**Nûbihar**
Pak Ajans Yayıncılık Ltd. Şti. Büyük Reşitpaşa Cad.
Yümni İş Merkezi No: 22 / 29 Vezneciler - Fatih / İstanbul
Tel & Faks: 0212 519 00 09
www.nubihar.com | email: nubihar@gmail.com

Yayın Sertifika No: 16919

Weşan No: 55 | Dînî
**RIYADUS-SALIHÎN** -BAXÊ QENCAN-
ÎMAMÊ NEWEWÎ

**Wergêr**
Mela Salihê Dihî

ISBN: 978-9944-360-54-8
Çapa Yekem: 2009
Çapa duyem: 2017

•

**Gerînendeyê Weşanê**
Süleyman Çevik

**Berg û Mîzanpaj**
Huseyn Şemrexî

•

**Çapxane**
Enes Basın Yayın ve Matbaacılık Ltd. Şti.
Litros Yolu Fatih İş Merkezi No: 12/210
Topkapı-İstanbul
Tel: 0212 501 47 63

9 789944 360548

ÎMAMÊ NEWEWÎ

رياض الصالحين

# RIYADUS SALIHÎN

## BAXÊ QENCAN

**Wergêr**

Mela Salihê Dihî

**ÎMAMÊ NEWEWÎ** Muhyuddîn Ebû Zekeriyya Yehya kurê Şeref en-Newewî di sala 631/1230an de li gundekî nêzîkî Şamê hatiye dinyayê. Xwendina xwe li Şamê temam kiriye. Bi 'ilm û zuhdê meşhûr bûye. Ewî li Şamê di Darul-Muheddissînê de tedrîsat kiriye. Xwe weqfî 'ilm û te'lîm û kitêbnivîsandinê kiriye. Di Mezhebê Şafi'î de cihek wî yê girîng heye. Eserên wî yên meşhûr ev in: *El-Mecmû', Şerha Sehîha Muslim, el-Mînhac, el-Ezkar, el-Erbe'în, Riyadus-Salihîn*. Newewî, li Şamê di sala 676/1277an de wefat kiriye. Li gundê Newayê medfûn e.



**MELA SALIHÊ DIHÎ** (ÇAKAY) Di sala 1943ê de li qeza Erûhê (Dihê) hatiye dinyayê. Wextê bû heft-heşt salî bavê wî ew danî ber xwendinê. Pêşiyê di medresê mintiqa Botan de xwend bi taybetî li cem Seydayê bi nav û deng Mela Muhemmed Zivinga Şikakî û li cem Seydayê hêja Seyyid Hesenê Girikî xwend. Paşê, ji wir derbasî Kurdistana 'Iraqê bû û mideteke li Erbîl, Dihok û Zaxo li cem çend me-lan xwend. Xasma li cem Seydayê Mela Hamidê Çemgewrî. Piştî hingî cardin zîvirî welatê xwe û xwendina xwe ya mayî li welatê xwe temam kir.

Serê pêşî salekê li Erûhê nehya 'Eynê melatî kir, dûvre berê xwe da Wanê û midetê 26 salan li gundê Erçekê li bajarê Wanê melatî kir. Di sala 1994an de teqawid bû. Ji hingî û pêde ev wezîfa xwe ya melatiyê, bi fexrîtî li mizgefteke Wanê didomîne.

Mela Salih, çi li Erçekê û çi li Wanê be heta niha dersên Erebî û yên dînî li gor usûla medresê dide. Bi dengxweşî tête naskirin. Tebî'etnezm e, qederek mersiye û helbestên wî bi zaravayê Kurmancî hene.

## BO RIYADUS-SALIHÎN

Ey bira, ger tu dixwazî zindiya her du cîhan
Dewsekê çêke, bihêle da bibî tu dilovan

Ev pirtûk dewsa min e, Leyla min e, *Baxê Qencan*
Hêvîdar im bibit sedemê mehdera wî serwerê Pêxemberan

Diyariya min e bona seyda û bona bab û dayikan
Ew ruhşad bin, xweşhal bin der bihişta wî Xwedayê dilovan

Daxwaza min tenê ew e ji xwendevan û hogiran
Xwendevanê pirtûkê bin hemî der sibeh û êvaran

Pir mefayê bibînin, jê bikin în'am û îhsan
Me bîr bînin di wan deman, me ji bîr nekin ji duan

*Mela Salihê Dihî*

# SPASÎ

Sed hezar hemd û sena bo Xwedayê Semedî
Ya ji mêj ve me dixwesta bi du çavên xwe me dî
Me dixwesta bi zimanê me Riyadus-Salihîn
Bête ser wechê cîhanê bête xwendin ebedî

'Alimek Salih ji Botanê bi Kurdî wergerand
Da hedîsa baş bixwînin b' Kurdî nav her beledî
Da ku xas û 'amê Kurdan tev bikin feydê ji wê
Tev ji bo feyda hedîsan jê bibînin mededê

Hate meydana qebûlê aliman teqrîz kirin
Tu xwedanê wê qewî kî, ya Xweda 'ewnê bidê
Sed selat û sed selaman tu bide rewza Resûl
Hem digel al û sehaban hem hemî ehlê Xwedê

*'Ebdulletîf Berwarî*

# NAVEROK

## TEQRÎZA SEYDA MELA‘ ÎMADEDDÎN REŞPOJAN BEDLÎSÎ

Birayê zana û jîr û hunerwer, mamosteyê pispor û hemiyetperwer Mela Salihê Dihî pir rûşinas û rehber ji min xwest û daxwaz kir ku ez xebata wî ya tercema kitêba bi nav û deng Riyadus-Salihîn di ber çavan re derbas bikim. Min jî ji wê bi taybetî çend cihên baldar û daxuyanî ber çavên xwe derbas kirin. Min dît ku di nava wê de tu çewt û şaşî û kêmanî tunîne gelek bi pêşeyekî çak û çeleng, bi kar û xebateke bîşr û şeng çêkiriye û hedîsên Pêxemberê me pir delal û rind bi zimanê gel; bi zimanekî sade yê Kurdî pêçve û şîrove kiriye. Hema min biryar da û min got: Babet e ku li ser wê pesnên giran bêne dayin, lewra wekî navê xwe baxek ji baxên bihiştê ye, şalûl û bilbilên fesahet û belaxetê li ser şax û çiqilên wê awaz awaz dixwînin. Û zar û zimanên biyanî rîwayet dikin.

Bêhna kulîlkên newrozê ji gulên wê yên bêhnmiskî difûre, ji neşra wê belav dibin bengîn û evîndarên dilsoz. Dîbaceke pir cindî ye li ser hedîsên pêxemberê me yê pîroz. Wek deryayê liveliv li ser ta ser tijî ye ji mirarên ‘ilm û ‘îrfan û huner.

Hêja ye jê re bê gotin “Gula Muhemmedî” ew gulên kesk û sor û zer. Bi vê girêdan pêwist e ku hemî xwendevanên Kurd evê berhema giranbiha bixwînin û bidin xwendin.

Dawî ez bi taybetî xwediyê vê xebatê pîroz dikim û jê re spas dikim. Xasma ku ev berhema xwe bi zimanê Kurdî çêkiriye ez bawer dikim wê ji Kurdan re bi xêr be.

Ez ji Yezdanê mezin hêvî û tewqê dikim ku jiyaneke dirêj û asûde bide nivîskarê wê yê dilêr û dilovan.

*‘Îmadeddîn Reşpojan Bedlîsî*

*21.03.2004*

وأرجو إن تم هذا الكتاب أن يكون سائقاً للمعتنى به إلى الخيرات، حاجزاً له عن أنواع القبائح والمهلكات وأنا سائل أخاً انتفع بشئ منه أن يدعو لي، ولوالدى، ومشايخى، وسائر أحبابنا، والمسلمين أجمعين، وعلى الله الكريم اعتمادى، وإليه تفويضى واستنادى، وحسبى الله ونعم الوكيل، ولا حول ولا قوة إلا بالله العزيز الحكيم

## PÊŞGOTINA MELA SALIH

Her bi navê Xwedayê rehmeta 'am û rehmeta xas.

Bes bi wî ye arîkarî.

Hemd û pesnên min ji bo Xwedayê mezin be, û spas û silav li ser wî Resûl û Pêxemberî bin ku bûye rêber û serdarê Pêxemberan, hem li ser hemû al û hevalên wî jî bin ku ji bona serkeftina doza wî ya mezin mal û canê xwe di wê rêkê de dane û hem li ser wan kesan jî bin ku li ser rêça wî ya rast û dirust meşiyane.

Ji bona salik û rêwiyan, gazîkirina bal Xwedayê te'ala ve, qenctir û paktirê kar û 'emela ye, çawa ku di ayetê de gotiye: *"Ma gotina kê ji ya wî kesî xweştir e ku (mirovan) vexwîne bi bal Xweda ve, 'emelên salih bike û bibêje: Ez ji musilmanan im"*[1]

Ev kitêba muxteser ku wekî "Riyadus-Salihîn" hatiye bi navkirin ji Hêla îmam û rêberê Xwedanas Şeyxul-Îslam Yeḥya kurê Şeref en-Newewî ve hatiye telîfkirin. Ew baştirîn û qenctirînê kitêban e ku di derbarê "terxîb/teşwîq û terhîb/tirsê" de ye. Û ji ber ku wî tê de hedîsên sehîh û meşhûr anîbûn, vê yeka han ciwanî û spehîtiya wê zêde kiribû û wî di pêşiya her mijarekê (bab) de çend ayet ji Qur'ana Pîroz danîbûn. Ji ber van çend sedeman kêfa min hat ku ez vê kitêbê wergerînim bi zimanê Kurmancî da ku gelê me jî bi zimanê xwe jiyana Pêxemberê ummetê binasin û li ser rêça wî dirust bimeşin. Bêguman dema ev yeka kete dilê min demek dirêj derbas bû, lêbelê min ev kar pêk neanî. Lewra min di dilê xwe de got: Eva barekî giran e, ez tenê naşêm vî barê giran hilgirim. Lêbelê ev yeka hanê di dilê min de dihat û diçû min dixwest ku ez vî kar û barî bi cî bînim. Vêca ji ber şewq û tirsê, min lingê xwe carekê pêşve diavêt û carekê paşve diavêt. Bi vî awayî ev tereddud û şek nêzîkî salekê domand. Di vî halê min

1 Fussîlet, 41/33.

de, derheqê pêkanîna vî kar û barî de daxwaz û teleba hindek hevalan, bi bal vî kar û barî ve şewqa min zêde kir.

Yek ji wan birayên ku ji min daxwaz kiriye û hêz û quweta min zêde kiriye û teshîha vê kitêbê ji serî heta binî kiriye, hevalê helîm û birêz Ebdulhadî Botî bû. Vêca li ser teklîf û daxwaza vî birayê xoşewîst şewqa min zêde bû, û min zend û bendê xwe hildan û min çend caran "îstixare" û şêwir ji Rebbê xwe kir û ji min re ayet û nîşanên serkeftinê kifş û diyar bûn. Min her ji Rebbê xwe arîkarî xwest û min her xwe sparte wî. Ew besî min e û xweş-wekîl e.

Bêguman qenctirînê wî tiştê ku eqilmend wextê xwe pê bibihurîne û sehîfa xwe pê spehî û rind û ciwan bike fêmkirin û hînbûna kitêba Xwedê te'ala, Qur'ana Pîroz e; 'emelkirina bi wî tiştê ku ew kitêb însanan bi bal ve gazî dike, û beyankirina emr û nehyên wê, hînbûn û hînkirina we'z û qisseyên wê, muhkem û muteşabihê wê ye. Gihîştina bal vê yekê jî, ji xeyrê xizmetkirina hedîs û axaftinên Resûl û Pêxemberê Xwedê (s.) tu çareserî jî tune. Û ji xeyrê komkirina wan, rabûna ser xwe ji bona berhevkirina wan, pak û paqijkirina wan ji şika ze'îfan û ji derew û bêbextiya wan kesên ku ji bal xwe ve hedîsan çêdikin.

Ji ber vê yekê "selefên salih" (r.), li ser xebatên sunneta Resûlê Xwedê pir rawestiyane. Xizmetek wisa kirine ku wan tu rê û mecal ji bona zêdekirinê nehêlane. Wan dizanîbûn bêguman 'ilmê kamilkirinê di hînbûna kitêba Xwedê û parastina sunneta Resûlê Xwedê (s.) de ye.

Her wekî şa'îr û hozanê wan di vê derbarî de gotiye:

كُلُّ الْعُلُومِ سِوى الْقُرْآنِ مُضِيعَةٌ * إِلَّا الْحَدِيثَ وَإِلَّا الْفِقْهَ فِي الدِّينِ
اَلْعِلْمُ مَا قَالَ فِيهِ النَّاسُ حَدَّثَنَا * وَمَا سِوَاهُ فَوَسْوَاسُ الشَّيَاطِينِ

Ango:

*Ji xeyrê Qur'an û hedîsan, hemû 'ilm bêhûde ne.*
*Ji bilî fiqh û şerî'etê, temamê 'ilman bêfeyde ne.*
*'ilim ew e însan bêjin "heddesena, enbe'ena"*
*Ji bilî van tev weswese û bêbextiyên şeytanan e.*

Dîsa lazim e em bizanin hedîs bingehek ji çar bingehên dînî ye. Piştî Qur'anê bingeha duyemîn e. Di pey re îcmaya ummetê û qiyas tê. Em dikarin bêjin hedîs, tefsîr û beyana Qur'ana Pîroz e. Wehy û tenzîl e ji aliyê Xwedê ve. Her wekî Xwedayê te'ala gotiye:

  

﴿وَمَا يَنْطِقُ عَنِ الْهَوَى ۝ إِنْ هُوَ إِلَّا وَحْيٌ يُوحَى﴾

"Ango: *Ew (Muhemmed) ji ber xwe napeyive, ew axaftin bes wehî e jê re tê wehîkirin."*[1]

Ji ber vê hindê 'ilmê hedîsê 'ilmekî girîng e. Kitêba "Riyadus-Salihîn" jî ji wan kitêbên hedîsan, kitêbek mu'teber û meşhûr e. Her kesê misilman wê kitêbê dinase û em dikarin bêjin piştî Qur'ana Pîroz ji kitêbên hedîsan, kitêba ku bêtir tê xwendin, kitêba "Riyadus-Salihîn" e.

Vêca ji ber van sedeman, me munasib dît ku em kitêba "Riyadus-Salihîn" wergerînîn bi bal zimanê Kurmancî, da ku feyda wê 'am be û dilê misilmanan pê geş û xweş be. "Xwedê te'ala besî min e. Ew xweş wekîl e, xweş mewla ye û xweş arîkar e."

Çend sedem hebûn ji bona wergerandina kitêba Riyadus-Salihînê.

Ev gelê me, ji sedî notî wî misilman e. Dîsa ji sedî notî wî ne hînkerê zimanê Erebî ye û neşê xwe hînî zimanê Erebî bike. Xelkê Kurmanc pirr 'aşiq û hezjêkerê huner û rewşenbîriya Îslamî ye, dixwazê xwe hînî Îslamê bike.

Her gel û milet li gor fitreta xwe xwedanê zimanekî ye; hînbûna zimanekî biyanî ji bo wî miletî ne tiştekî hêsan e.

Çiqas ziman û lûxetên di dunyayê de hene hemû jî fitrî ne, ji aliyê Xwedê ve hatine. Ji mu'ciza ku Xweda te'ala daye bavê me Adem (e.) in. Her wekî Xwedayê te'ala gotiye:

وَعَلَّمَ آدَمَ الأَسْمَاءَ كُلَّهَا

Ango: *Xweda te'ala ziman û navê hemû tiştan bi Adem (e.) daye zanîn.* Îxtilaf û newekhevbûna zimanan jî ji nîşan û nişêtên hebûn û yekîtiya Xweda te'ala ne.

Her wekî Xwedayê te'ala gotiye:

*"Ji nîşanên Xwedê te'ala ye, afirandina wî ya erd û asîmanan, cuda cudabûna ziman û rengên we. Bêguman di vê de ji bo zanayan ders û îbret hene."*[2]

Em dizanin û dibînin seqafet û hunera Îslamî bi gelek lûxet û zimanan hatiye nivîsandin û hatiye wergerandin, hêjî tê nivîsandin û wergerandin da ku her kes bi zimanê dayika xwe seqafeta Îslamê têbigîhêje û fêm bike. Ez dikarim di vê yekê de gelek mîsalan bidim. Wekî zimanê Farisî, zimanê Tirkî, yê Ûrdûyî û zimanên Ewrûpî..... Zimanê Kurdî, Kurmancî jî wekî her zimanan zimanekî fitrî ye. Dikarim bibêjim ji hindek zimanan dew-

1 Necm, 53/3-4.
2 Rûm, 30/22.

lemendtir e. Nivîsandina bi zimanê Kurdî hêsan e. Lewra em bi zimanê xwe desttengiyê –ser, ber û cir û nêr û mêyê– nabînin. Çunkî bi zimanê me ev hemû bêzehmet û bêlêgeran têne raçandin. Belkî hema wisa em pê diaxivin û bi xwe têne ber devê me wekî dasa paleyiyê hingî te qefdek çinî te dî qefdekî din hate ber dasa te.

Pêwist e be te zanîn heçîka edeb û huner û zimanê Kurdî ye, gelekî ji mêje û serê kaniya wî berê ve rêj e. Belê pûte pê nehatiye kirin û kesekî guhê xwe nedayê û ser û ber lê nehatiye kirin ta ku pêş bikeve, berz û bilind bibe, belav û eşkere bibe. Ji ber gelek bûyeran bêxwedî maye. Lêbelê em hêvîdar in ew şevên tarî bi roj derkevin, ronî bibin pêşerojên me, di havînê de çiqas berf û baran bibarin jî qet tesîrê nadin. Delîl û nîşana jiyan û hebûna her miletan zimanê wan e.

Ji ber van çend sedemên bihurîn bi taybetî me jî munasib dît, vê kitêba Riyadus-Salihîn ku ji hemû rengan nêzîkî du hezar hedîsên Pêxemberê Xwedê (s.) tê de hene tercume bikin, wergerinîn bi zimanê Kurmancî da ku xwişk û birayên me yên misilman bi zimanê xwe axaftinên Pêxemberê ummetê bixwînin û têbigîhêjin, faydê jê bibînin û me bi bîra xwe bînin, li ser ruhê me fatîhan bixwînin. Ez hêvîdar im ev kar û xebata min bi dilê xwendevanan be û kêfa wan pê xweş be. Lewra wergerandina hedîsan e û bi zimanê dayikê ye, zimanê dayikê jî şêrîn û kar e. Her wekî sertacê edîban Şêx Ehmedê Xanî gotiye:

Ev meywe eger ne abedar e, Kurmancî ye ew qeder li kar e.

Ez jî dibêjim eva karekî qenc e û berkeftî ye, lewra ew Kurmancî ye û zimanê me yê fitrî ye.

Di dawiyê de ez jî wekî Şêx Sa‘dê Şîrazî (r.) dibêjim:

بماند سالها این نظم وترتیب * ز ما هر ذرّه خاك افتاده جایی

غرض نقشیست کز ما باز ماند * که هستي را نمی بینم بقایی

مگر صاحبدلي روزی به رحمت * کند در کار این مسکین دعایی

*Bi îzna Xwedê, dê bimîne ev nezm û tertîba hanê*
*Di haletê biherifit her zerrek j' axa bedenê*
*Armanca me ji vî kar û barê hanê*
*Lewra nabînim mayinê ji bona vê dunya hanê*
*Ew e bimînit pişt me re ev eser û dewsa hanê*
*Me bîr bînin bi duayan xwendevan û gelê hanê*

*Dibe ku xweydilê pakî rokê tenê*
*Bi rehmetê dua rêke ji bo vî miskînê hanê.*

Di dawiyê de ez zor spasî ji birayê hêja Ebdulhadî Botî, kekê Ebdulhelîm Canikî û ji Murad Celalî re dikim bo beşdariyan wan di vê wergerê de. Ez bi eynî miqamî, ji tev heval û dostên ku teşwiqa min kirin û ez destek kirim re jî teşekkur dikim. Xwedê me teva ji xizmeta dînê xwe re amade bike.

"اَلْحَمْدُ لِلّٰهِ رَبِّ الْعَالَمِينَ"

Muhemmed Salihê Dihî
21 Meha Şe'banê 1424 H.
17 Cotmehî 2003 M.

Spasî hemû ji bo Xwedayê ku tek û tenê ye û serdest e li ser hemû tiştî be. serdest e û guneh jêbir e, şevê li rojê dipêçe, da ku bibe bîranîn ji bo xwedanê dil û çavan û da ku bibe dîtin ji bo xwedanê hiş û giramiyê. Ew Xwedayê ku di nav aferîdeyê xwe de kesê ku hilbijartiye, hişyar kiriye û ew di evî warî de kiriye zahid, ew mijûl kiriye bi çavnêriya xwe û bi domandina ramanan, dîsa ew mijûl kiriye bi jêneqetîna ‘ibret jêgirtinê û biranînê. Xwedê, ew kes serxistiye ji tebata ser ta‘etê xwe re û ji amadehiya roja axîretê re û ji tirsa ji tişta ku Ewî bide xẹyîdandin û warê agir wacib dike û ji bo parastina li ser vê yekê –digel guherandina rewş û asûman–.

Ez bi pesnekî ji diltir, paqijtir, dormadortir û zehftir pesnê Xwedê didim.

Û ez şehdê didim ku ji bilî wî Xwedayê ku hêja û rûmetbilind e û dilsoz û dilovan e tu Xwedê nîn in. Ez dîsa şehdê didim ku Hz. Muhemmed (s.) bende û pêxemberê wî ye û dost û xoşewîstê wî ye û berê (xelkê) dide rêya rast û ewana gazî dînê dirust dike. Selat û silavê Xwedê li ser wî û hemû pêxemberan, hemû al û hemû salihan be.

Heçîka piştî vê yekê: Bi rastî Xwedayê te‘ala gotiye: “Min cin û mirov afirandine bes ji bo ku ebdîtiya min bikin. Ez tu rizqî ji wan navêm û ez navêm ew xwarinê bidine min.” Ev ayet eşkere kiriye ku cin û mirov ji bo ‘evdîtiyê ji Xwedê teala re bikin hatine afirandin. Vêca li ser ewan pêwist bû raçavkirina ew sedema ku ji bo wê hatine afirandin û dîsa pêwist bû bi zahidiyê pişt dane par û pişkê dinyayê. Lewra dinya warê qedanê ye, ne warê nemirin û bêdawiyê ye û dinya warê hêstir rijandinê ye, ne warê dilşahiyê ye û dîsa dinya warê jêbirînê ye ne yê berdewamiyê ye. Ji bo vê yekê hişyartirê ehlê dinyayê yê pirtir ‘ebdîtiya Xwedê dikin û hişyartirê

însanên tê de jî yê pirtir zahid in. Xwedayê te'ala gotiye: "Bi rastî hindî jiyana dinyayê heye wekî wê ava ku me ji asîmanan barandiye. Vêca bi evê avê hêşînahiya gelek reng û têkil dertê ya ku mirov û heywan (her du) jê dixwin. Gava ku erd bi hêşînahiya xwe dixemile û ciwan dibe, xwediyê wê (xelkê erdê) hazir dikin ew dişên biçînin û mifayê jê wergirin (hinga) fermana me bi şev an bi roj serda hat, vêca me wekî zeviya dorê lê gir, herwekî berê nika ew hêşînahî çênebûye. Aha bi evî rengî em ayet û nîşanê xwe bi dirêjî eşkere dikin ji bo ewanê hizir dikin." Ayetên di vê maneyê de pir zehf in. Helbestvan çi xweş gotiye:

إِنَّ لِلَّهِ عِبَاداً فُطَنَا * طَلَّقُوا الدُّنْيَا وَخَافُوا الفِتَنَا

نَظَرُوا فِيهَا فَلَمَّا عَلِمُوا * أَنَّهَا لَيْسَتْ لِحَيٍّ وَطَنَا

جَعَلُوهَا لُجَّةً وَاتَّخَذُوا * صَالِحَ الأَعْمَالِ فِيهَا سُفُنَا

*Hindek qûlên Xwedê hene, xwedanfikr û zekayê ne.*
*Dinya berdane û ji fina wê tirsiyane.*
*Wan berê xwe danê, dema wan zanî*
*Nabit welatê berdewam ji bo kesî.*
*Wan jî dunya wekî deryayê çêkirin*
*Kar û barê çakî tê da kirin gemî û meş kirin*

Dema rewşa dinyayê çawa ku min vegotî be, rewşa me û tişta ku em bi sedem wê hatine afirandin çawa ku min bihurandî be vêca pêwist e li ser stûbarê (mukellef) ku ew nefsa xwe di rêya qenc de bimeşîne, bi karbendê xwedanê hiş û besîretê karbend bike, xwe amade bike ji wê tişta ku min îşaretê bal ve kiriye û tema min girîng bigre. Ji stûbarê re rasttirê rêya di evî derbarî de û durusttirê rêya ku mirov tê de diçe: xwedan-edebbûyina bi ewan adab û gotinên ku ji pêxemberê me –serokê ên pêşî û ên paşî û qenctirînê yên bihurîn û yên mayine selat û silavê Xwedê li ser wî û hemû pêxemberên din be– hatine rîwayetkirin. Bêgumen Xwede te'ala gotiye: "Li ser başî û parêzgeriya Xwedê arîkariya hevdu bikin." Ji Pêxemberê Xwedê (s.) bi senedeke sehîh hatiye rîwayetkirin ku ewî wiha gotiye: "Xwedê di arîkariya bendeyê xwe de ye heta ku bende jî di arîkariya birayê xwe de be." Wiha jî gotiye: "Kesê xêrê nîşan bide ji wî re jî wekî xêra yê kirî xêr heye." Wiha jî gotiye: "Kesê însanan raste rê bike wekî xêra wan yê ku bûne tabi'ê wî, ku ji xêra ewan tu tiştek jî kêm nabe, ji wî re jî xêr heye."

Dîsa hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) ji Hz. 'Elî (r.) re wiha gotiye: *"Bi sond, eger Xwedê li ser destê te miroveki raste rê bike, ji bo te ji devehên sor xêrtir e."*

Vêca min rewa dît ku ez muxteserekê ji hedîsên sehîh kom bikim ku ew muxteser, şamil bê li ser wan tiştên ku dibe rêya axretê ji xwediyê xwe re, hem adabê wî yên zahirî û batinî di xwe de bicivîne. Hem komker be ji bo mijarên terxîb, terhîb û mijarên dîtir yên adabê salikan; her wekî hedîsên zuhdê, riyazeta nefsê, serastkirina exlaq, paqijkirin û dermankirina dilan, parastina xwarîtî û şaşîtîiyên dest û pê û hinavan. Hem ji xeyrê evan, ji armancên 'arifan û Xwedanasan jî di xwe de bihewîne.

Min pêwist dît ku ez di vê pirtûkê de bi tenê hedîsên sehîh yên eşkere zikir bikim ku têne nîsbetkirin bi bal kitêbên sehîh yên navdar ve. Û hem min pêwist dît ku dest bi "bab/serbeşê kitêbê" bi hinek ayetên kerîme yên ji Qur'ana serdest bikim û tişta ku muhtacê bal serastkirin û daxuyaniya manake veşartiye bi temên pirxweş bixemilînim. Wextê min di dûmayîka hedîsekê de got: Muttefequn 'eleyh, maneya wê: Ew hedîs Buxarî û Muslim rîwayet kirine.

Ez hêvîdar im, eger ev kitêb temam bibe, ev kitêb kesê ku xwe pê bigre wî kesî bajo bal xêra ve û wî kesî berbest bike ji cûrê kirêt û helakkeran/ew tiştê ku xwediyên xwe dibine helakê. Ez ji ewî birayê ku tiştekî ji evê pirtûkê kêrê dibîne daxwaz dikim ku ji min, dê-bavê min, şêxê min, hezjêkerên min yên dine û mislimanan hemûyan re dua bike. Bes li ser Xwedayê birûmet e ewlehiya min, bes bal Xwedê ve ye paldan û xwe spartina min. Xwedê besî min e û ew xweş wekîl e. Hêz û qewet bes bi Xwedayê serdest û hîkmetdar e.

# كِتَابُ الْمَأْمُورَاتِ
# KÎTABUL-ME'MÛRAT

## بَابُ الْإِخْلَاصِ
## ÎXLAS/DILSAXÎ LI GEL XWEDÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedê Te'alê gotiye:

﴿وَمَا أُمِرُوا إِلَّا لِيَعْبُدُوا اللَّهَ مُخْلِصِينَ لَهُ الدِّينَ حُنَفَآءَ وَيُقِيمُوا الصَّلَوٰةَ وَيُؤْتُوا الزَّكَوٰةَ وَذَٰلِكَ دِينُ الْقَيِّمَةِ﴾

"Ferman li wan hatibû kirin ku bes ew, xwerû ji Xwedê tenê re îbadetê bikin û li ser dînê pak, rast û dirust bimînin, nimêjê bikin û zikatê bidin, a ev e dînê rast û dirust."[1]

﴿لَنْ يَنَالَ اللَّهَ لُحُومُهَا وَلَا دِمَاؤُهَا وَلَٰكِنْ يَنَالُهُ التَّقْوَىٰ مِنْكُمْ﴾

"Ne goştê wan (qurbanan) û ne jî xûna wan digihêje Xwedê. Lêbelê teqwatiya we digihêje wî."[2]

﴿قُلْ إِنْ تُخْفُوا مَا فِي صُدُورِكُمْ أَوْ تُبْدُوهُ يَعْلَمْهُ اللَّهُ﴾

Tu bêje: Ew tiştên ku hûn di dilê xwe de vedişêrin yan jî eşkere dikin Xwedê pê dizane."[3]

---

1 Beyyîne, 98/5.
2 Hecc, 22/37.
3 Alî 'Îmran, 3/29.

١- عَنْ أَمِيرِ الْمُؤْمِنِينَ أَبِي حَفْصٍ عُمَرَ بِنِ الْخَطَّابِ بن نُفَيْل بن عَبْدُ الْعُزَّى بن رِيَاح بن عَبْدُ الله بن قُرَط بن رَزَاح بن عَدِيٍّ بن كَعْبْ بن لُؤَيّ بن غَالِب الْقُرْشِيَّ الْعَدَوِيَّ ﷺ سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّمَا الأَعْمَالُ بِالنِّيَّاتِ، وَإِنَّمَا لِكُلِّ إِمْرِئٍ مَا نَوَى، فَمَنْ كَانَتْ هِجْرَتُهُ إِلَى اللهِ وَرَسُولِهِ، فَهِجْرَتُهُ إِلَى اللهِ وَرَسُولِهِ وَمَنْ كَانَتْ هِجْرَتُهُ لِدُنْيَا يُصِيبُهَا أَوْ إِمْرَأَةٍ يَنْكِحُهَا، فَهِجْرَتُهُ إِلَى مَا هَاجَرَ إِلَيْهِ). مُتفق عَلَى صَحته، رَوَاهُ إِمَامَا الْمُحَدِثين: أَبُو عَبْد الله مُحَمَّد بن إِسْمَاعِيل بن إِبْرَاهِيمَ بن الْمُغِيرة بن بردزبه الْبُخَارِي، وَأَبُو الْحُسَيْن مُسْلِم بن الْحَجَّاج بن مُسْلِمِ الْقُشَيْرِيَّ النَّيسَابُورِي ﷺ فِي كِتَابِيهِمَا.

1- Ji Emîrul-Mu'minîn Ebû Hefs 'Umer kurê Xettab kurê Nufeyl kurê 'Ebdul'uzza kurê Riyah kurê 'Ebdullah kurê Quret kurê Rezah kurê 'Ediyy kurê Ke'b kurê Lueyy kurê Xalib el-Qureşî el-'Edewî (r.), gotiye: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, digot: "Bêguman 'emel li gorî niyetan e û ji her kesî re tişta ku niyet kirî heye. Vêca kesê hîcreta wî bi bal Xwedê û Resûlê wî ve be, ji xwe hîcreta wî bi bal Xwedê û Resûlê wî ve ye. Û kesê hîcreta wî ji bona bidestxistina dunyayê be, yan jî bo mahrkirina jinekê be, jixwe hîcreta wî ji bo tişta ku hîcret kirî ye."

Bi îttifaqa her du îmamên hedîsê. Her du pêşîvanê muheddîsan; Ebû 'Ebdullah Muhemmed kurê Îsmaîl kurê Îbrahîm kurê Muxîre kurê Berdîzbe Buxarî û Ebul-Huseyn Muslim kurê Heccac kurê Muslim el-Quşeyrî en-Nîsabûrî –Xwedê ji wan her dukan razî be– di her du kitêbên xwe yên ku rastirînê kitêbên di rîwayetkirinan de hatine nivîsandin, ku Sehîhul-Buxarî û Sehîhu-Muslim in.

٢- عَنْ أُمِّ الْمُؤْمِنِين أُمّ عَبْد اللَّهِ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (يَغْزُو جَيْشٌ الْكَعْبَةَ، فَإِذَا كَانُوا بِبَيْدَاءَ مِنَ الأَرْضِ يُخْسَفُ بِأَوَّلِهِمْ وَآخِرِهِمْ) قَالَتْ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ كَيْفَ يُخْسَفُ بِأَوَّلِهِمْ وَآخِرِهِمْ وَفِيهِمْ أَسْوَاقُهُمْ وَمَنْ لَيْسَ مِنْهُمْ؟ قَالَ: (يُخْسَفُ بِأَوَّلِهِمْ وَآخِرِهِمْ ثُمَّ يُبْعَثُونَ عَلَى نِيَّاتِهِمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم، وَهَذَا لَفْظُ الْبُخَارِي.

2- Ji Ummul-Mu'minîn Ummu 'Ebdullah 'Aîşe (r.), gotiye: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye:"Wê leşkerek êrîşî Ke'be bike. Wextê hatin çolekê de, wê tevên wan binerd bibin." Li ser vê gotinê min got: Ya Resûlê Xwedê (s.) çawa wê tev binerd bibin, di nav wan de bazirgan û yên ne ji wan hene?

Wî got: “Wê temam binerd bibin, paşê wê li ser niyeta xwe bêne şandin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine. Ev lefzê Buxarî ye.*

٣- عَنْ أُمِّ الْمُؤْمِنِين عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (لَا هِجْرَةَ بَعْدَ الْفَتْحِ وَلَكِنْ جِهَادٌ وَنِيَّةٌ فَإِذَا اسْتُنْفِرْتُمْ فَانْفِرُوا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

3- Ji Umul-Mu’minîn ‘Aîşe (r.), gotiye: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Piştî fetha Mekkê êdî hîcret nîne, belê cîhad û niyet heye. Wextê hûn hatin gazîkirin bo cîhadê herinê.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Mana wê ew e ku êdî hîcretkirina ji Mekkê çênabê. Lewra êdî Mekke bûye Darul-Îslam.

٤- عَنْ أَبِي عَبْدُ اللَّهِ جَابِرِ بن عَبْدُ اللَّهِ الأَنْصَارِي قَالَ: كُنَّا مَعَ النَّبِيِّ ﷺ فِي غَزَاةٍ فَقَالَ: (إِنَّ بِالْمَدِينَةِ لَرِجَالاً مَا سِرْتُمْ مَسِيرًا وَلَا قَطَعْتُمْ وَادِيًا إِلَّا كَانُوا مَعَكُمْ، حَبَسَهُمُ الْمَرَضُ)

وَفِي رِوَايَةٍ: (إِلَّا شَرِكُوكُمْ فِي الأَجْرِ) رَوَاهُ مُسْلِم.

وَرَوَاهُ الْبُخَارِي: عَنْ أَنَسِ بن مَالِك ﵁ قَالَ: رَجَعْنَا مِنْ غَزْوَةِ تَبُوكَ مَعَ النَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ: (إِنَّ أَقْوَاماً خَلْفَنَا بِالْمَدِينَةِ مَا سَلَكْنَا شِعْبًا وَلَا وَادِيًا إِلَّا وَهُمْ مَعَنَا، حَبَسَهُمُ الْعُذْرِ).

4- Ji Ebû ‘Ebdullah Cabîr kurê ‘Ebdullah el-Ensarî (r.), gotiye: Em di herbekê de digel Pêxemberê Xwedê (s.) bûn, vêca ewî (s.) got: “Bêguman di Medînê de hinek mirov hene ku hûn çiqas bi rê ve diçin û hûn çiqas gelî û newala diborin ew jî digel we ne (di xêrê de). Nexweşiyê ew hiştine.” Di senedekê de: Bêguman ew jî di xêrê de hevparê we ne. *Muslim rîwayet kiriye.*

Û Buxarî ji Enes kurê Malîk (r.) rîwayet kiriye, gotiye: Em di gel Pêxemberê Xwedê (s.) ji herba Tebûkê vedigeriyan, wî got: “Bêguman li paş me de li Medînê hinek meriv hene, em ji çi rê û newalan derbas bûbin ew jî bi me re ne. Lêbelê ‘uzrê wan ew girêdane.”

٥- وَعَنْ أَبِي يَزِيدَ مَعْنِ بْنِ يَزِيدَ بنِ الأَخْنَسِ ﵃ هُوَ وَأَبُوهُ وَجَدُّهُ صَحَابِيُّونَ، قَالَ: كَانَ أَبِي يَزِيدُ أَخْرَجَ دَنَانِيرَ يَتَصَدَّقُ بِهَا، فَوَضَعَهَا عِنْدَ رَجُلٍ فِي الْمَسْجِدِ، فَجِئْتُ فَأَخَذْتُهَا فَأَتَيْتُهُ بِهَا، فَقَالَ: وَاللَّهِ مَا إِيَّاكَ أَرَدْتُ، فَخَاصَمْتُهُ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ،

فَقَالَ: (لَكَ مَا نَوَيْتَ يَا يَزِيدُ، وَلَكَ مَا أَخَذْتَ يَا مَعْنُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

5- ji Ebû Yezîd Me'n kurê Yezîd kurê Exnes (r.) –ew, bav û bapîrê xwe sahabî ne– gotiye: Bavê min Yezîd ji bona xêrê hinek dînar veqetandibûn danîbûn cem zilamekî li mizgeftê. Ez çûm min ew dînar stendin û min anîn. Bavê min got: Wellahî min ne bi niyeta te danîbûne cem wî zilamî. Me hevdu bir bal Pêxember (s.), Pêxember (s.) got: "Ya Yezîd! Niyeta te ji te re ye. Ya Me'n! Tişta te jî stendiye ji te re ye." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٦- عَنْ أَبِي إِسْحَاقَ سَعْدِ بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ مَالِكِ بْنِ أُهَيْبِ بْنِ عَبْدِ مَنَافِ بْنِ زُهْرَةَ بْنِ كِلَابِ بْنِ مُرَّةَ بْنِ كَعْبِ بْنِ لُؤَيٍّ الْقُرَشِيِّ الزُّهْرِيِّ ﷺ أَحَدَ الْعَشَرَةَ الْمَشْهُودُ لَهُمْ بِالْجَنَّةِ ﷺ قَالَ: جَاءَنِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَعُودُنِي عَامَ حَجَّةِ الْوَدَاعِ مِنْ وَجَعٍ اشْتَدَّ بِي، فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، إِنِّي قَدْ بَلَغَ بِي مِنَ الْوَجَعِ مَا تَرَى، وَأَنَا ذُو مَالٍ وَلَا يَرِثُنِي إِلَّا ابْنَةٌ لِي، أَفَأَتَصَدَّقُ بِثُلُثَيْ مَالِي؟ قَالَ: (لَا) فَقُلْتُ: فَالشَّطْرُ يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ فَقَالَ: (لَا) قُلْتُ: فَالثُّلُثُ يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: (الثُّلُثُ وَالثُّلُثُ كَبِيرٌ) أَوْ (كَثِيرٌ إِنَّكَ أَنْ تَذَرَ وَرَثَتَكَ أَغْنِيَاءَ خَيْرٌ مِنْ أَنْ تَذَرَهُمْ عَالَةً يَتَكَفَّفُونَ النَّاسَ، وَإِنَّكَ لَنْ تُنْفِقَ نَفَقَةً تَبْتَغِي بِهَا وَجْهَ اللَّهِ إِلَّا أُجِرْتَ عَلَيْهَا، حَتَّى مَا تَجْعَلُ فِي فِي امْرَأَتِكَ) فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أُخَلَّفُ بَعْدَ أَصْحَابِي؟ قَالَ: (إِنَّكَ لَنْ تُخَلَّفَ فَتَعْمَلَ عَمَلاً تَبْتَغِي بِهِ وَجْهَ اللَّهِ إِلَّا ازْدَدْتَ بِهِ دَرَجَةً وَرِفْعَةً، وَلَعَلَّكَ أَنْ تُخَلَّفَ حَتَّى يَنْتَفِعَ بِكَ أَقْوَامٌ وَيُضَرَّ بِكَ آخَرُونَ اللَّهُمَّ، أَمْضِ لِأَصْحَابِي هِجْرَتَهُمْ وَلَا تَرُدَّهُمْ عَلَى أَعْقَابِهِمْ، لَكِنِ الْبَائِسُ سَعْدُ بْنُ خَوْلَةَ يَرْثِي لَهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ أَنْ مَاتَ بِمَكَّةَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

6- Ji Ebû Îshaq Se'd kurê Ebû Weqqas Malik kurê Uheyb kurê 'Ebdumenaf kurê Zuhre kurê Kîlab kurê Murre kurê Ke'b kurê Lûeyy el-Qureşî ez-Zuhrî (r.) –yek ji wan deh kesên ku mizgîniya cennetê bo wan hatiye dayin e– gotiye: Di sala Heccetul-Weda'ê de nexweşiyek giran li min peyda bûbû. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) hate serdana min. Min got: Ya Resûlê Xwedê (s.)! Vaye tu dibînê nexweşiya min çi qeder li min giran bûye û ez zilamek maldar im. Ji xeynê qîzikeka min tu warisê min tunîne. Vêca ez ji sê behra du behr malê xwe bikim sedeqe tu çi dibêjî? Pêxember (s.) got:

  

Na. Min got nêvî çawa ye ya Resûlê Xwedê (s.)! Got: Na. Min got sêyek çawa ye ya Resûlê Xwedê! (s.) Got: Sêyek û sêyek jî zaf e (yan mezin e). Ger tu warisên xwe, şûna xwe de dewlemend bihêlî ji wê çêtire ku tu wan feqîr bihêlî ku parsê bikin. Bêguman çi sedeqa ku tu ji bo Xwedê te'ala bidî tê xêra wê bistînî, heta ew loqma ku tu bixî devê pîreka xwe de jî. Min got: Ya Resûlê Xwedê (s.)! (Hûnê bizivirin Medînê), ma ezê ji hevalê xwe bimînim? Pêxember (s.) got: Tu şûnde namînî! Çi karê ku te ji bona riza Xwedê te'ala bikî wê pê merteba te bilind bibe û tu yê pê derecekî bilind bibî. Hêvî heye tu hê bijî û hinek mirov ji te feydê bibînin û hinek dîtir ji te zerar bibînin. Ya Rebbî! Tu hîcreta sehabiyên min temam bike û şûnde wan nezivirîne. Lêbelê Se'dê kurê Xewle çi belengaz e!" Ji ber ku hê li Mekkê wefat kir. Pêxember (s.), pir ber wî ket. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى لَا يَنْظُرُ إِلَى أَجْسَامِكُمْ وَلَا إِلَى صُوَرِكُمْ وَلَكِنْ يَنْظُرُ إِلَى قُلُوبِكُمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

7- Ji Ebû Hureyre (r.), gotiye: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman Xweda te'ala li bejna we û şikl û malê we meyze nake. Lêbelê li dil û karên we meyze dike." *Muslim rîwayet kiriye.*

٨- عَنْ أَبِي مُوسَى عَبْدِ اللَّهِ بْنِ قَيْسٍ الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: سُئِلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنِ الرَّجُلِ يُقَاتِلُ شَجَاعَةً وَيُقَاتِلُ حَمِيَّةً وَيُقَاتِلُ رِيَاءً، أَيُّ ذَلِكَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ؟ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (مَنْ قَاتَلَ لِتَكُونَ كَلِمَةُ اللَّهِ هِيَ الْعُلْيَا فَهُوَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

8- Ji Ebû Mûsa 'Ebdullah kurê Qeys el-Eş'erî (r.), gotiye: Ji Pêxemberê Xwedê (s.) hate pirsiyarkirin; yê ku ji bona' egîdtiya xwe nîşan bide şer dike û yê ji bona riyakarî û qewmiyeta xwe şer dike kîjan ji van di rêya Xwedê te'ala de ye? Pêxember (s.) got: "Kî ji bona ku dînê Xwedê te'ala bilind bibe şer bike ew di rêya Xwedê te'ala de ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩- عَنْ أَبِي بَكْرَةَ نُفَيْعِ بْنِ الْحَارِسِ الثَّقَفِيِّ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (إِذَا الْتَقَى الْمُسْلِمَانِ بِسَيْفَيْهِمَا فَالْقَاتِلُ وَالْمَقْتُولُ فِي النَّارِ، قُلْتُ يَا رَسُولَ اللَّهِ هَذَا الْقَاتِلُ فَمَا بَالُ الْمَقْتُولِ؟ قَالَ: (إِنَّهُ كَانَ حَرِيصًا عَلَى قَتْلِ صَاحِبِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

9- Ji Ebû Bekirete Nufey‘ kurê Haris es-Seqefî (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê du misilman ji bona hevdu bikujin bi şûrê xwe bikevin pêşberê hev, qatil û meqtûl di êgir de ne.” Min got: “Ya Resûlê Xwedê (s.)! Qatil erê, ma çima meqtûl di êgir de ye?” Got: “Ewî jî dixwest ku hevalê xwe bikuje.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠ - عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (صَلَاةُ الرَّجُلِ جَمَاعَةً تَزِيدُ عَلَى صَلَاتِهِ فِي سُوقِهِ وَبَيْتِهِ بِضْعًا وَعِشْرِينَ دَرَجَةً، وَذَلِكَ أَنَّ أَحَدَهُمْ إِذَا تَوَضَّأَ فَأَحْسَنَ الْوُضُوءَ ثُمَّ أَتَى الْمَسْجِدَ لَا يُرِيدُ إِلَّا الصَّلَاةَ، لَا يَنْهَزُهُ إِلَّا الصَّلَاةُ لَمْ يَخْطُ خَطْوَةً إِلَّا رُفِعَ بِهَا دَرَجَةٌ وَحُطَّ عَنْهُ بِهَا خَطِيئَةٌ حَتَّى يَدْخُلَ الْمَسْجِدَ، فَإِذَا دَخَلَ الْمَسْجِدَ كَانَ فِي الصَّلَاةِ مَا كَانَتِ الصَّلَاةُ هِيَ تَحْبِسُهُ، وَالْمَلَائِكَةُ تُصَلُّونَ عَلَى أَحَدِكُمْ مَا دَامَ فِي مَجْلِسِهِ الَّذِي صَلَّى فِيهِ، يَقُولُونَ: اللَّهُمَّ إِرْحَمْهُ، اَللَّهُمَّ إِغْفِرْ لَهُ، اَللَّهُمَّ تُبْ عَلَيْهِ، مَا لَمْ يُؤْذِ فِيهِ، مَا لَمْ يُحْدِثْ فِيهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ وَهَذَا لَفْظُ مُسْلِمٍ.

10- Ji Ebû Hureyre (r.), gotiye: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Nimêja yekî bi cema‘et bi bîst û tiştek derecan zêdetir e ji nimêja wî ya li sûk û mala wî. Lewra wextê yek ji we destnimêja xwe qenc girt û paşê jî ji bona nimêjê ne ji bona tiştek dîtir here mizgeftê, bi her gavekî ku tavêje derecek jê re bilind dibe û gunehek wî tê ‘efûkirin heta ku bigihêje mizgeftê. Wextê kete mizgeftê, ew mirov di nimêjê de tê hesabê heta ku li hêviya nimêjê ye. Heta ku hûn di ciyê ku we lê nimêjkirî de rûniştîne û tu kes ne êşandiye û bêdestnimêj nebin Melaîket jî li ser we selewata didin û dibêjin: “Ya Rebbî, tu rehmê lê bike û wî ‘efû bike, ya Rebbî tu toba wî qebûl bikî.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine. Ev lefzê Muslim e.*

١١ - عَنْ أَبِي الْعَبَّاسِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَبَّاسِ بْنِ عَبْدِ الْمُطَّلِبِ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِيمَا يَرْوِي عَنْ رَبِّهِ تَبَارَكَ وَتَعَالَى قَالَ: (إِنَّ اللَّهَ كَتَبَ الْحَسَنَاتِ وَالسَّيِّئَاتِ ثُمَّ بَيَّنَ ذَلِكَ، فَمَنْ هَمَّ بِحَسَنَةٍ فَلَمْ يَعْمَلْهَا كَتَبَهَا اللَّهُ تَبَارَكَ وَتَعَالَى عِنْدَهُ حَسَنَةً كَامِلَةً، وَإِنْ هَمَّ بِهَا فَعَمِلَهَا كَتَبَهَا اللَّهُ عَشْرَ حَسَنَاتٍ إِلَى سَبْعِمِائَةِ ضِعْفٍ إِلَى أَضْعَافٍ كَثِيرَةٍ، وإِنْ هَمَّ بِسَيِّئَةٍ فَلَمْ

يَعْمَلْهَا كَتَبَهَا اللَّهُ تَعَالَى عِنْدَهُ حَسَنَةً كَامِلَةً وَإِنْ هَمَّ بِهَا فَعَمِلَهَا كَتَبَهَا اللَّهُ سَيِّئَةً وَاحِدَةً، وَإِنْ هَمَّ بِهَا فَعَمِلَهَا كَتَبَهَا رَبُّهُ سَيِّئَةً وَاحِدَةً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

11- Ji Ebû ‘Ebbas Ebdulah kurê ‘Ebbas kurê Ebdulmuttelîb Xwedê ji wan razî be ku Pêxemberê Xwede (s.) ji Xwedê te‘ala rîwayet kiriye, gotiye: "Bêguman Xweda te‘ala xêr û guneh nivîsîne, paşê jî ewî ew beyan kirine: Vêca kesê ku niyeta kirina xêrekê bike, lêbelê nekir Xwedê te‘ala jê re xêra wê qenciyek tam dinivîsîne. Heke ew xêr kir Xwedê te‘ala jê re ji deh xêra heta heftsed qata û zêdetir jî dinivîsîne. Heke niyeta neqenciyekê kir û nekir Xwedê te‘ala jê re xêra qenciyek tam dinivîsîne. Heke niyeta wê neqenciyê kir û kir, Xwedê te‘ala gunehek tenê jê re dinivîsîne." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢- عَنْ أَبِي عَبْدِ الرَّحْمَنِ عَبْدَ اللَّهِ بْنَ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهُ ﷺ يَقُولُ: (إِنْطَلَقَ ثَلَاثَةُ رَهْطٍ مِمَّنْ كَانَ قَبْلَكُمْ حَتَّى آوَاهُمُ الْمَبِيتُ إِلَى غَارٍ فَدَخَلُوهُ. فَانْحَدَرَتْ صَخْرَةٌ مِنَ الْجَبَلِ فَسَدَّتْ عَلَيْهِمُ الْغَارَ، فَقَالُوا: إِنَّهُ لَا يُنْجِيكُمْ مِنْ هَذِهِ الصَّخْرَةِ إِلَّا أَنْ تَدْعُوا اللَّهَ تَعَالَى بِصَالِحِ أَعْمَالِكُمْ: قَالَ رَجُلٌ مِنْهُمْ: اللَّهُمَّ كَانَ لِي أَبَوَانِ شَيْخَانِ كَبِيرَانِ وَكُنْتُ لَا أَغْبِقُ قَبْلَهُمَا أَهْلاً وَلَا مَالاً، فَنَأَى بِي طَلَبُ الشَّجَرِ يَوْماً فَلَمْ أُرِحْ عَلَيْهِمَا حَتَّى نَامَا، فَحَلَبْتُ لَهُمَا غَبُوقَهُمَا فَوَجَدْتُهُمَا نَائِمِينَ، وَكَرِهْتُ أَنْ أُوقِظَهُمَا وَأَنْ أَغْبُقَ قَبْلَهُمَا أَهْلاً أَوْ مَالاً، فَلَبِثْتُ وَالْقَدَحُ عَلَى يَدِي أَنْتَظِرُ إِسْتِيقَاظَهُمَا حَتَّى بَرِقَ الْفَجْرُ وَالصِّبْيَةُ يَتَضَاغَوْنَ عِنْدَ قَدَمِي، فَاسْتَيْقَظَا فَشَرِبَا غَبُوقَهُمَا، اَللَّهُمَّ إِنْ كُنْتُ فَعَلْتُ ذَلِكَ إِبْتِغَاءَ وَجْهِكَ فَفَرِّجْ عَنَّا مَا نَحْنُ فِيهِ مِنْ هَذِهِ الصَّخْرَةِ، فَانْفَرَجَتْ شَيْئًا لَا يَسْتَطِيعُونَ الْخُرُوجَ مِنْهُ. قَالَ الْآخَرُ: اَللَّهُمَّ إنه كَانَتْ لِي إِبْنَةُ عَمٍّ كَانَتْ أَحَبَّ النَّاسِ إِلَيَّ، وَفِي رِوَايَةٍ: (كُنْتَ أُحِبُّهَا كَأَشَدِّ مَا يُحِبُّ الرِّجَالِ النِّسَاءَ، فَأَرَدْتُهَا عَلَى نَفْسِهَا فَامْتَنَعَتْ مِنِّي حَتَّى أَلَمَّتْ بِهَا سَنَةٌ مِنَ السِّنِينَ فَجَاءَتْنِي فَأَعْطَيْتُهَا عِشْرِينَ وَمِائَةَ دِينَارٍ عَلَى أَنْ تُخَلِّيَ بَيْنِي وَبَيْنَ نَفْسِهَا فَفَعَلَتْ، حَتَّى إِذَا قَدَرْتُ عَلَيْهَا) وَفِي رِوَايَةٍ: (فَلَمَّا قَعَدْتُ بَيْنَ رِجْلَيْهَا قَالَتْ:

إِتَّقِ اللَّهَ وَلَا تَفُضَّ الْخَاتَمَ إِلَّا بِحَقِّهِ، فَانْصَرَفْتُ عَنْهَا وَهِيَ أَحَبُّ النَّاسِ إِلَيَّ وَتَرَكْتُ الذَّهَبَ الَّذِي أَعْطَيْتُهَا، اَللَّهُمَّ إِنْ كُنْتُ فَعَلْتُ ذَلِكَ إِبْتِغَاءَ وَجْهِكَ فَافْرُجْ عَنَّا مَا نَحْنُ فِيهِ فَانْفَرَجَتِ الصَّخْرَةُ غَيْرَ أَنَّهُمْ لَا يَسْتَطِيعُونَ الْخُرُوجَ مِنْهَا. وَقَالَ الثَّالِثُ: اَللَّهُمَّ إِنِّي اسْتَأْجَرْتُ أُجَرَاءَ وَأَعْطَيْتُهُمْ أَجْرَهُمْ غَيْرَ رَجُلٍ وَاحِدٍ، تَرَكَ الَّذِي لَهُ وَذَهَبَ فَثَمَّرْتُ أَجْرَهُ حَتَّى كَثُرَتْ مِنْهُ الأَمْوَالُ فَجَاءَنِي بَعْدَ حِينٍ فَقَالَ يَا عَبْدَ اللَّهِ أَدِّ إِلَيَّ أَجْرِي، فَقُلْتُ كُلُّ مَا تَرَى مِنْ أَجْرِكَ مِنَ الإِبِلِ وَالْبَقَرِ وَالْغَنَمِ وَالرَّقِيقِ، فَقَالَ: يَا عَبْدَ اللَّهِ لَا تَسْتَهْزِئْ بِي، فَقُلْتُ: لَا أَسْتَهْزِئُ بِكَ، فَأَخَذَهُ كُلَّهُ فَأَسْتَاقَهُ فَلَمْ يَتْرُكْ مِنْهُ شَيْئًا اَللَّهُمَّ إِنْ كُنْتُ فَعَلْتُ ذَلِكَ إِبْتِغَاءَ وَجْهِكَ فَأَفْرُجْ عَنَّا مَا نَحْنُ فِيهِ، فَأَنْفَرَجَتِ الصَّخْرَةُ فَخَرَجُوا يَمْشُونَ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

12- Ji Ebû ‘Ebdurrehman ‘Ebdullah Îbnu ‘Umer kurê Xettab (r.), gotiye: Min bihîst ku Pêxemberê Xwedê (s.) digot: “Sê kes ji wan yên beriya we de çûne seferê. Li wan bû şev û ji bona ku şeva xwe bibihurînin ketine şikeftekê. Vêca latek gindir bû, hat derê şikeftê li wan girt. Li ser vê yekê gotin: “Ne ku hûn bi karên xwe yên qenc dua ji Xwedê te‘ala bikin tiştek ku we ji vê latê azad bike tuneye.”

Yekî ji wan got: Ya Rebbî! Bêguman min hebû dê û bavê pîr. Beriya wan min xwarin û vexwarin nedida zarokên xwe, ne jî xizmetkarên xwe. Vêca rojekê gera dara ez dûrkirim, hê ez ne zivirîm ew razabûn. Min şîrê wan dot û anî da ku bidime wan min dît vaye xewre çûne. Vêca min nexwest ez wan şiyar bikim, ne jî beriya wan şîr bidim zarok û xizmetkarên xwe. Ez mam hêviya wan ku rabin û qedehek li ser destê min bû heta bû sibeh. Zarokek li ber lingê min zarzara wî ye. Dema rabûn, şîrê xwe vexwarin. Ya Rebbî! Heke min ev kar ji bona riza te kiriye, tu me ji tengiya vî latî xelas bike. Hebikekî (deriyê şikeftê) vebû lêbelê nekarîn derkevin.

Yê diduyan got: Ya Rebbî! Min dotmamek hebû ji herkesî zehftir min hez jê dikir. Di rîwayetek dîtir de: “Min ewqas hez jê dikir ku ne mimkun e mêrek ewqas hez ji pîrekekê bike.” Min jê xwest ku xwe teslîmî min bike lê wê ev tişt qebûl nekir. Heta saleke xela ser de hat, hate cem min. Min sed û bîst dînar danê da ku xwe teslîmî min bike, ewê jî qebûl kir. Wextê min xwest ku ez bikim, di rîwayetek dîtir de; “wextê ez di neqeba her du lingên wê de rûniştim” wê got: Ji Xwedê te‘ala bitirse gostîlkê (bekaretê) bêyî heq xerab neke. Ez cih de rabûm û di gel ku ew li bal min ji her kesî

 

mehbûbtir bû min eva kir, dînarê dabûyê jî jê re hiştin. Ya Rebbî! Heke min ev kar ji bona rizayê te kiriye tu me ji vê tengiya ku em tê de ne xelas bike. Hebikekî dîtir (deriyê şikeftê) vebû lêbelê nekarîn derkevin.

Yê sisiyan got: Ya Rebbî! Min hinek karker girtibûn min heqê teva dabû wan, ji bilî yekî heqê xwe hiştibû û çûbû. Min heqê wî jê re şixuland heta malê wî zêde bû. Piştî midetekî hat û got: Ey ‘ebdê Xwedê! Heqê min bide min. Min jê re got: Ev deveh, çêlek, pez û qulên ku tu dibînî hemû jî heqê te ne. Got: Ey ‘ebdê Xwedê! Tinazê xwe bi min neke. Min got; ez tinazan nakim. Rabû ew tev de dan pêşiya xwe, birin û tiştek nehişte şûnde. Ya Rebbî! Heke min ev kar ji bona riza te kiriye, tu me ji tengiya vî latî xelas bike. Lat ji deriyê şikeftê derket û derketin, di rêya xwe de meşiyan.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ التَّوْبَة

## TOBEKIRIN

قَالَ الْعُلَمَاءُ: التَّوْبَةُ وَاجِبَةٌ مِنْ كُلِّ ذَنْبٍ، فَإِنْ كَانَتِ الْمَعْصِيَةُ بَيْنَ الْعَبْدِ وَبَيْنَ اللَّهِ تَعَالَى لَا تَتَعَلَّقُ بِحَقِّ آدَمِيٍّ فَلَهَا ثَلَاثَةُ شُرُوطٍ: أَحَدُهُمَا: أَنْ يُقْلِعَ عَنِ الْمَعْصِيَةِ، وَالثَّانِي: أَنْ يَنْدَمَ عَلَى فِعْلِهَا، وَالثَّالِثُ: أَنْ يَعْزِمَ أَنْ لَا يَعُودَ لَهَا أَبَداً، فَإِنْ فقدَ أَحَدُ الثَّلَاثَةِ لَمْ تصحَّ تَوْبَتُهُ، وَإِنْ كَانَتِ الْمَعْصِيَةُ تَتَعَلَّقُ بَآدَمِيٍّ فَشَرْطهَا أَرْبَعَة: هَذِهِ الثَّلَاثةُ، وَأَنْ يَبْرَأَ مِنْ حَقِّ صَاحِبِهَا، فَإِنْ كَانَتْ مَالاً أَوْ نَحوَهُ رَدَّهُ إِلَيْهِ، وَإِنْ كَانَ حَدَّ قَذْفٍ وَنَحْوَهُ مَكَّنَهُ مِنْهُ أَوْ طلبَ عَفْوَهُ، وَإِنْ كَانَ غَيْبَةً اِسْتَحَلَّهُ مِنْهَا، وَيَجبُ أَنْ يَتُوبَ مِنْ جَمِيعِ الذُّنُوبِ، فَإِنْ تَابَ مِنْ بَعْضهَا صَحَّتْ تَوْبَتهُ عِنْدَ أَهْلِ الْحَقِّ مِنْ ذَلِكَ الذَّنْبِ وَبَقِيَ عَلَيْهِ الْبَاقِي، وَقَدْ تَظَاهَرَتْ دَلَائِلُ الْكِتَابِ وَالسُّنَّةِ وَإِجْمَاعِ الأُمَّةِ عَلَى وُجُوبِ التَّوْبَةِ.

‘Aliman gotine: Tobekirina ji her gunehî wacib e. Vêca heke gunehê hatiye kirin, di neqeba Xwedê te‘ala û ‘ebd de be, tu heqê mirovan tê de tunebe, şertên qebûlbûna vê tobê sisê ne:

a–Devberdana ji wî gunehî.

b–Poşmanbûna ji kirina wî gunehî.

c–Qerardana nezivirandina bal wî gunehî ve tu caran. Heke şertek ji van pêk nehatibe ew tobe nerast e.

Heke ew guneh di derbarê mafê mirovekî de be, şertên wê çar in: Ev her siseyên bihûrî û pakkirina ji xwedanê wî mafî. Heke (ew maf) mal û yan tiştekî mîna mal be, wê li xwedanê mal bizivirîne. Heke heqekî ku ji bêbextiyê hatibe carîkirin û yan tiştek ji vî cureyî (gunehî) be, wê rê bide xwedanê wî heqî ku mafê xwe îcra bike û yan jî daxwaza 'efûkirinê jê bike. Heke ew maf xeybet be, wê xwe pê bide helalkirin. (Bi vî meqamî) tobekirina ji tevê gunehan wacib e. Heke ji hinek gunehan tobe bike li gorî ehlên heqiyê, toba wî ji wan gunehan sehîh e, yên dîtir di stûyê wî de dimînin. Ayetên Qur'anê, hedîsên Pêxember (s.) û îcma'a ummetê ferziyeta tobekirinê bi hev re didine nîşandan.

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَتُوبُوا إِلَى اللَّهِ جَمِيعاً أَيُّهَا الْمُؤْمِنُونَ لَعَلَّكُمْ تُفْلِحُونَ﴾

*"Gelî ewên bawerî anîne! Hûn hemû bal Xwedê ve tobe bikin, da ku rizgar bibin."*[1]

﴿إِسْتَغْفِرُوا رَبَّكُمْ ثُمَّ تُوبُوا إِلَيْهِ﴾

*"Daxwaza lêborînê ji Xwedayê xwe bikin, paşê bal wî ve tobe bikin."*[2]

﴿يَاأَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا تُوبُوا إِلَى اللَّهِ تَوْبَةً نَصُوحاً﴾

*"Gelî ewên bawerî anîne! Bal Xwedê ve bi tobeyek dirustahî tobe bikin."*[3]

١٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ: (يَقُولُ وَاللَّهِ إِنِّي لَأَسْتَغْفِرُ اللَّهَ وَأَتُوبُ إِلَيْهِ فِي الْيَوْمِ أَكْثَرَ مِنْ سَبْعِينَ مَرَّةً). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

13- Ji Ebû Hureyre (r.), gotiye: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye, digot: "Ez sond dixwim bi Xwedê te'ala ku di rojê de, ez ji heftê carî zehftir bexişandinê ji Xwedê te'ala dixwazim û bal wî ve tobe dikim." Buxarî rîwayet kiriye.

١٤- عَنِ الأَغَرِّ بْنِ يَسَارٍ الْمُزَنِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (يَا أَيُّهَا النَّاسُ تُوبُوا إِلَى اللَّهِ وَاسْتَغْفِرُوهُ فَإِنِّي أَتُوبُ فِي الْيَوْمِ مِائَةَ مَرَّةٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

14- Ji el-Exerr kurê Yesar el-Muzenî (r.), gotiye: Pêxember (s.) gotiye:

1 Nûr, 24/31.
2 Hûd, 11/3.
3 Tehrîm, 66/8.

  

"Gelî mirovan! Tobe bikin bal Xwedê ve û bexişandina gunehan jê bixwazin. Bêguman ez rojê sed carî bi bal wî ve tobe dikim." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥ - عَنْ أَبِي حَمْزَةَ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ الأَنْصَارِيِّ ﷺ خَادِمِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (اللَّهُ أَفْرَحُ بِتَوْبَةِ عَبْدِهِ مِنْ أَحَدِكُمْ سَقَطَ عَلَى بَعِيرِهِ وَقَدْ أَضَلَّهُ فِي أَرْضِ فَلَاةٍ)

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: (اللَّهُ أَشَدُّ فَرَحًا بِتَوْبَةِ عَبْدِهِ حِينَ يَتُوبُ إِلَيْهِ مِنْ أَحَدِكُمْ كَانَ عَلَى رَاحِلَتِهِ بِأَرْضِ فَلَاةٍ فَأَنْفَلَتَتْ مِنْهُ وَعَلَيْهَا طَعَامُهُ وَشَرَابُهُ فَأَيِسَ مِنْهَا، فَأَتَى شَجَرَةً فَاضْطَجَعَ فِي ظِلِّهَا وَقَدْ أَيِسَ مِنْ رَاحِلَتِهِ، فَبَيْنَمَا هُوَ كَذَلِكَ إِذْ هُوَ بِهَا قَائِمَةً عِنْدَهُ، فَأَخَذَ بِخِطَامِهَ. ثُمَّ قَالَ مِنْ شِدَّةِ الْفَرَحِ: اَللَّهُمَّ أَنْتَ عَبْدِي وَأَنَا رَبُّكَ أَخْطَأَ مِنْ شِدَّةِ الْفَرَحِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: (اَللَّهُ أَشَدُّ فَرَحاً بِتَوْبَةِ عَبْدِهِ حِينَ يَتُوبُ إِلَيْهِ مِنْ أَحَدِكُمْ كَانَ عَلَى رَاحِلَتِهِ بِأَرْضِ فَلَاةٍ فَانْفَلَتَتْ مِنْهُ وَعَلَيْهَا طَعَامُهُ وَشَرَابُهُ، فَأَيِسَ مِنهَا فَأَتَى شَجَرَةً فَاضْطَجَعَ فِي ظِلِّهَا وَقَدْ أَيِسَ مِنْ رَاحِلَتِهِ، فَبَيْنَمَا هُوَ كَذلِكَ إِذْ هُوَ بِهَا قَائِمَةً عِنْدَهُ، فَأَخَذَ بِخطَامِهَا، ثُمَّ قَالَ مِنْ شِدَّةِ الْفَرَحِ: اللَّهُمَّ أَنْتَ عَبْدِي وَأَنَا رَبُّكَ،أَخْطَأَ مِنْ شِدَّةِ الْفَرَحِ).

15- Ji xizmetkarê Pêxember (s.), Ebû Hemze Enes kurê Malik (r.), gotiye: Pêxemberê Xwedê (s.), gotiye: "Mirovek dewara xwe di çolekê de winda bike/berze bike wextê dewara xwe bibîne,çiqas kêfxweş dibe. Vêca gava mirovek jî tobe dike kêfa Xwedê te'ala xweştir dibe. (Toba wî qebûl dike). *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayeteka Muslim de "kêfxweşbûna Xwedê te'ala bi tobekirina yekî ji wê zêdetir e ji kêfxweşbûna wî kesê ku ser dewara xwe be di çolekê de, vêca dewara wî filitî, xwarin û vexwarina wî li ser be û jê bêhêvî bû, ew jî hat bal darekê, xwe di ber siya wê darê de dirêjkir, xwe jê bêhêvî kiribû. Di wî kêliyî de ji nişkave dît ku dewara wî li bal wî rawestiyaye. Vêca rabû hefsarê wê girt û dûre ji zêdeyiya kêfxweşbûnê, li şûna ku bêje: Ey Xweda! Ez 'ebdê te me tu Rebbê min î, şaş bû û got: Ey Xweda! Tu 'ebdê min î ez Rebbê te me."

١٦- عَنْ أَبِي مُوسَى عَبْدِ اللَّهِ بنِ قَيْسٍ الأَشْعَرِيِّ ﵁ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى يَبْسُطُ يَدَهُ بِاللَّيْلِ لِيَتُوبَ مُسِيءُ النَّهَارِ، وَيَبْسُطُ يَدَهُ بِالنَّهَارِ لِيَتُوبَ مُسِيءُ اللَّيْلِ، حَتَّى تَطْلُعَ الشَّمْسُ مِنْ مَغْرِبِهَا). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

16- Ji Ebû Mûsa ‘Ebdullah kurê Qeys el-Eş‘erî (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Xwedê te‘ala bi şev destê xwe vedike da ku kesê bi roj guneh kiriye, tobe bike û bi roj destê xwe vedike da ku kesê bi şev guneh kiriye tobe bike. Ev berdewam e heya roj ji rojava ve derkeve.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ تَابَ قَبْلَ أَنْ تَطْلُعَ الشَّمْسُ مِنْ مَغْرِبِهَا تَابَ اللَّهُ عَلَيْهِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

17- Ji Ebû Hureyre (r.), gotiye: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê ji beriya ku roj ji rojava ve derkeve tobe bike Xwedê te‘ala toba wî qebûl dike.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨- عَنْ أَبِي عَبْدِ الرَّحمَنِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ ﵄ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ اللَّهَ يَقْبَلُ تَوْبَةَ الْعَبْدِ مَا لَمْ يُغَرْغِرْ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

18- Ji Ebû ‘Ebdurrehman ‘Ebdullah Îbnu ‘Umer kurê Xettab (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Xwedê te‘ala, hindî mirin neketibe gewriya ‘ebd de toba wî jê qebûl dike.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye: Hesen e.*

١٩- عَنْ زِرِّ بْنِ حُبَيْشٍ قَالَ: أَتَيْتُ صَفْوَانَ بْنَ عَسَّالٍ ﵁ أَسْأَلُهُ عَنِ الْمَسْحِ عَلَى الْخُفَّيْنِ فَقَالَ: مَا جَاءَ بِكَ يَا زِرّ؟ فَقُلْتُ: إِبْتِغَاءَ الْعِلْمِ، فَقَالَ: إِنَّ الْمَلاَئِكَةَ لَتَضَعُ أَجْنِحَتَهَا لِطَالِبِ الْعِلْمِ رِضاً بِمَا يَطْلُبُ، فَقُلْتُ: إِنَّهُ قَدْ حَكَّ فِي صَدْرِي الْمَسْحُ عَلَى الْخُفَّيْنِ بَعْدَ الْغَائِطِ وَالْبَوْلِ، وَكُنْتَ امْرَأً مِنْ أَصْحَابِ النَّبِيِّ ﷺ فَجِئْتُ أَسْأَلُكَ، هَلْ سَمِعْتَهُ يَذْكُرُ فِي ذَلِكَ شَيْئًا؟ قَالَ: نَعَمْ، كَانَ يَأْمُرُنَا إِذَا كُنَّا سَفْرًا- أَوْ مُسَافِرِينَ- أَنْ لَا نَنْزِعَ خِفَافَنَا ثَلاثَةَ أَيَّامٍ وَلَيَالِيهِنَّ إِلَّا مِنْ جَنَابَةٍ، لَكِنْ مِنْ غَائِطٍ وَبَوْلٍ وَنَوْمٍ فَقُلْتُ هَلْ سَمِعْتَهُ يَذْكُرُ فِي الْهَوَى شَيْئًا؟ قَالَ:

نَعَمْ، كُنَّا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي سَفَرٍ، فَبَيْنَا نَحْنُ عِنْدَهُ إِذْ نَادَاهُ أَعْرَابِيٌّ بِصَوْتٍ لَهُ جَهْوَرِيٍّ: يَا مُحَمَّدُ، فَأَجَابَهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ نَحْواً مِنْ صَوْتِهِ: هَاؤُمُ، فَقُلْتُ لَهُ: وَيْحَكَ اغْضُضْ مِنْ صَوْتِكَ فَإِنَّكَ عِنْدَ النَّبِيِّ ﷺ وَقَدْ نُهِيتَ عَنْ هَذَا، فَقَالَ: وَاللَّهِ لَا أَغْضُضُ، قَالَ الأَعْرَابِيُّ: الْمَرْءُ يُحِبُّ الْقَوْمَ وَلَمَّا يَلْحَقْ بِهِمْ، قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (الْمَرْءُ مَعَ مَنْ أَحَبَّ يَوْمَ الْقِيَامَةِ) فَمَا زَالَ يُحَدِّثُنَا حَتَّى ذَكَرَ بَابًا مِنَ الْمَغْرِبِ مَسِيرَةُ عَرْضِهِ، أَوْ يَسِيرُ الرَّاكِبُ فِي عَرْضِهِ أَرْبَعِينَ أَوْ سَبْعِينَ عَامًا، قَالَ سُفْيَانُ أَحَدُ الرُّوَاةِ: قِبَلَ الشَّامِ خَلَقَهُ اللَّهُ تَعَالَى يَوْمَ خَلَقَ السَّمَوَاتِ وَالأَرْضَ مَفْتُوحًا لِلتَّوْبَةِ لَا يُغْلَقُ حَتَّى تَطْلُعَ الشَّمْسُ مِنْهُ. رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

19- Ji Zerr kurê Hubeyş el-Esedî, gotiye: Ez hatim bal Sefwanê kurê ʽEssal (r.) ku pirsa mesihkirina li ser xufkan jê bikim. Sefwan got: Tu hatî çi ey Zerr! Min got: Ez hatime ji bona hînkirina ʻilmê. Ewî got: Bêguman melaîketên Xwedê te'ala ji eşqa ʻilmê çengên/bazikên xwe dideynin bin piyê ewên teleba ʻilmê dikin. Min got: Mesela mesihkirina xufkan piştî destav û mîzkirinê ji min re bûye meraq û tu jî mirovekî ji sehabiyên Pêxember i (s.). Vêca ez hatim ku pirsa vê ji te bikim, ka te sehkiriye ku Pêxember (s.) di derbarê vê de tiştek gotiye? Sefwan got: Belê, wextê em di seferekê de bûna –yan jî rêwingîbûna– emrê me dikir ku em xufkên xwe sê roj û sê şevan nederêxin, çi ji destavê çi ji mîzê û çi ji xewê, lêbelê cenabet na. Min got: Ka te di derheqê hezjêkirinê de jî tiştek jê bihîstiye? Got: Belê, em di seferekê de di gel wî bûn, di wextê ku em li cem bûn, me dît ku zilamek bedewî bi dengekî bilind bang kir got: Ya Muhemmed! Pêxemberê Xwedê (s.) jî wekî dengê wî bersiv da û got; va me ez. Min gote wî bedewî ʻeyb e ji te re dengê xwe nizm bike, tu li cem Pêxemberê Xwedê yî û men'a te hatiye kirin ji vê. Ewî got, wellahî ez dengê xwe nizm nakim. Bedewî got: Wê çawa be eger mirovek hej hinekan bike lêbelê ne gihîşitibe wan? Pêxember (s.) got: Mirov roja qiyametê bi hezjêkiriyên xwe re ye. Sefwan sohbeta xwe dirêj kir heta behsa dergehekî li rojava kir ku firehiya wî, yan çûna siwarekî tê de çil yan heftê sal in. Yek ji rawiyê vê hedîsê, Sufyan gotiye: Ew derî ji hêla Şamê ve ye, gava ku Xwedê te'ala erd û asîman çêkirin ew jî çêkiriye. Ji tobê re vekiriye, heya ku roj tê re dernekeve nayête girtin.

*Tirmizî û hinekên dîtir riwayet kirine û gotiye: Hesen û sehîh e.*

Ellah, Rebbê lawik." Paşê tîrê bavêje min. Bêşik eger wisa bikî tuyê bikarî min bikujî. Melik jî rabû însan li erdek rast de dan komkirin. Ew lawik li ser çiqilek dara xurmeyê girêda, paşê tîrek ji turkê wî anî der, paşê ew tîr danî di nîva kevanê de paşê got: Bîsmîllahî Rebbil–Xulam. Paşê tîr avêt. Ew tîr jî tam îsabetê cênîka wî kir, lawik destê xwe danî ser cênîka xwe û wefat kir. Li ser vê yekê temamê însanan gotin: Me bawerî heye bi Xwedayê lawik. Hatin ba melik û gotin: "Ew tiştê ku tu jê ditirsiyayî te dît? Wellahî tişta ku tu jê ditirsiyayî hate serê te. Însanan hemûyan îman anîn." Melik emir da ku li kuçan de çal/qoncal bên kolan û agir tê de bê hilkirin û got: "Kesê ku ji dînê nû venegere wî bavêjin xendekên êgir. Wekî Melik gotî ew îş hate kirin. Heta jinek bi zaroka xwe ve hat, wê ji bo ku nekeve çala êgir xwe paşve xist, ji ber vî Xwedê ew zarok da xeberdan. Ji dayika xwe re got: "Dayê tu sebrê bike tu li ser heqiyê yî." *Muslim rîwayet kiriye.*

٣١- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: مَرَّ النَّبِيُّ ﷺ عَلَى إِمْرَأَةٍ تَبْكِي عِنْدَ قَبْرٍ، فَقَالَ لَهَا: (اِتَّقِي اللَّهَ وَاصْبِرِي) فَقَالَتْ: إِلَيْكَ عَنِّي فَإِنَّكَ لَمْ تُصَبْ بِمُصِيبَتِي، وَلَمْ تَعْرِفْهُ، فَقِيلَ لَهَا: إِنَّهُ النَّبِيُّ ﷺ فَأَتَتْ بَابَ النَّبِيِّ ﷺ فَلَمْ تَجِدْ عِنْدَهُ بَوَّابِينَ، فَقَالَتْ: لَمْ أَعْرِفْكَ، فَقَالَ:(إِنَّمَا الصَّبْرُ عِنْدَ الصَّدْمَةِ الْأُولَى). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: (تَبْكِي عَلَى صَبِيٍّ لَهَا)

31- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Pêxemberê Xwedê (s.) ber jinekê re derbasbû ku li cem qebrekî digiriya. Vêca Pêxember (s.) jê re got: "Ey hermetê ji Xwedê bitirse –emrê wî pêk bîne– sebrê bike." Jinikê jî got: "Ji min dûr be, derdê ku hatiye serê min nehatiye serê te." Lê wê jinikê Pêxember nas nekiribû. Jê re hate gotin: Ne ew Pêxember (s.) bû. Li ser vê gotinê ew jinek hate ber derê mala Resûlê Xwedê (s.) li ber derî tu dergevan nebûn. Ji Pêxember (s.) re got: Li min bibore min tu nas nekiribûyî. Pêxember (s.) got: "Sebr, –ya xwedanxêr– ew e ku di serê musîbetê de sebrê bike." Di rîwayeta Muslim de: "Li ser zaroka xwe digiriya." *Buxarî û Muslim riwayet kirin.*

٣٢-عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (يَقُولُ اللَّهُ تَعَالَى: مَا لِعَبْدِي الْمُؤْمِنِ جَزَاءٌ إِذَا قَبَضْتُ صَفِيَّهُ مِنْ أَهْلِ الدُّنْيَا ثُمَّ احْتَسَبَهُ إِلَّا الْجَنَّةُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

32- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, bêşik Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Xwedê te‘ala dibêje: “‘Ebdê min ê mu’min wextê ez hezjêkireke wî yê ehlê dunyayê jê bistînim û ew jî sebrê bike û xêra wî ji xwe re bihesibîne, mukafata wî cennet e.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

٣٣- عَنْ عَائِشَةَ ﵂ أَنَّهَا سَأَلَتْ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ عَنِ الطَّاعُونِ، فَأَخْبَرَهَا أَنَّهُ: (كَانَ عَذَابًا يَبْعَثُهُ اللَّهُ تَعَالَى عَلَى مَنْ يَشَاءُ، فَجَعَلَهُ اللَّهُ تَعَالَى رَحْمَةً لِلْمُؤْمِنِينَ، فَلَيْسَ مِنْ عَبْدٍ يَقَعُ فِي الطَّاعُونِ فَيَمْكُثُ فِي بَلَدِهِ صَابِرًا مُحْتَسِباً يَعْلَمُ أَنَّهُ لَا يُصِيبَهُ إِلَّا مَا كَتَبَ اللَّهُ لَهُ إِلَّا كَانَ لَهُ مِثْلُ أَجْرِ الشَّهِيدِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

33- Ji ‘Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin, wê pirsa nexweşiya Ta‘ûnê ji Resûlê Xwedê (s.) kir, Pêxember jê re got: “Ta‘ûn ezabek e, Xwedê te‘ala li ser wan kesên ku bivî/bixwaze dişîne. Paşê Xwedê ew kire rehmet ji bona mu‘minan. Vêca ji wî ‘ebdê mu’minên ku bikeve Ta‘ûnê û ciyê xwe de raweste û sebirkar be û xêra wê sebrê ji xwe re hesêb bike û bizanbe ji xeyrê tişta Xwedê te‘ala jê re nivîsî nayê serê wî, mîna şehîdî xêr jê re heye.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

٣٤-عَنْ أَنَسٍ ﵁ قَالَ سَمِعْتُ رَسُول اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ قَالَ إِذَا ابْتَلَيْتُ عَبْدِي بِحَبِيبَتَيْهِ فَصَبَرَ عَوَّضْتُهُ مِنْهُمَا الْجَنَّةَ، يُرِيدُ عَيْنَيْهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

34- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin, digot: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye, digot: “Xwedayê te‘ala gotiye: Gava min ‘ebdê xwe bi birina her du hezjêkirinên wî –çavên wî– îmtihan kir, wî jî sebir kir, ezê ji ber wan ve cenneta xwe bidimê.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

٣٥- عَنْ عَطَاءِ بْنِ أَبِي رَبَاحٍ قَالَ: قَالَ لِي اِبْنُ عَبَّاسٍ ﵄: أَلَا أُرِيكَ امْرَأَةً مِنْ أَهْلِ الْجَنَّةِ؟ فَقُلْتُ: بَلَى، قَالَ هَذِهِ الْمَرْأَةُ السَّوْدَاءُ، أَتَتِ النَّبِيَّ ﷺ فَقَالَتْ: إِنِّي أُصْرَعُ وَإِنِّي أَتَكَشَّفُ فَادْعُ اللَّهَ تَعَالَى لِي، قَالَ: (إِنْ شِئْتِ صَبَرْتِ وَلَكِ الْجَنَّةُ، وَإِنْ شِئْتِ دَعَوْتُ اللَّهَ تَعَالَى أَنْ يُعَافِيَكِ) فَقَالَتْ: أَصْبِرُ، فَقَالَتْ: إِنِّي أَتَكَشَّفُ فَادْعُ اللَّهَ أَلاَّ أَتَكَشَّفَ

فَدَعَا لَهَا. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

35- Ji Eta kurê Ebû Rebah hatiye rîwayetkirin, gotiye: kurê 'Ebbas (r.) ji min re got: Te divê/dixwazî ez jineke ji ehlê cennetê nîşanî te bidim? Min got: Belê. Got: A ev jinika reş a ku diçe bal Resûlê Xwedê (s.) û jê re dibêje: Ez bi nexweşiya serayê –nexweşiya tepê– dikevim û bedena min xuya dibe ji bo min dua bike. Resûlê Xwedê (s.) got: "Ger te bivê sebrê bike, ciyê te jî dê behişt be. Eger te bivê ezê ji bo te dua bikim, bila Xwedê te'ala te şîfa bike." Jinikê got: Ezê sebrê bikim bes ji bo min dua bike ku bedena min xuya nebe. Pêxember (s.) jê re dua kir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٦- عَنْ أَبِي عَبْدِ الرَّحْمَنِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: كَأَنِّي أَنْظُرُ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ يَحْكِي نَبِيّاً مِنَ الأَنْبِيَاءِ صَلَوَاتُ اللَّهِ وَسَلَامُهُ عَلَيْهِمْ ضَرَبَهُ قَوْمُهُ فَأَدْمَوْهُ وَهُوَ يَمْسَحُ الدَّمَ عَنْ وَجْهِهِ وَهُوَ يَقُولُ: (اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِقَوْمِي فَإِنَّهُمْ لَا يَعْلَمُونَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

36- Ji Ebû 'Ebdurrehman 'Ebdullah kurê Mes'ûd (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Wekî ku ez Pêxember (s.) dibînim ku hikayeta pêxemberekî ji pêxemberan (s.) dikir: Qewmê wî li wî dabûn û rûyê wî xûn kiribûn. Ewî jî ji rûyê xwe xûn paqij dikir û digot: "Xwedayê min! Tu qewmê min 'efû bike, çunkî ew nezanin." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٣٧- عَنْ أَبِي سَعِيدٍ وَأَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَا يُصِيبُ الْمُسْلِمَ مِنْ نَصَبٍ وَلَا وَصَبٍ، وَلَا هَمٍّ وَلَا حَزَنٍ، وَلَا أَذًى وَلَا غَمٍّ حَتَّى الشَّوْكَةِ يُشَاكُهَا إِلَّا كَفَّرَ اللَّهُ بِهَا مِنْ خَطَايَاهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

37- Ji Ebû Se'îd el-Xudrî û Ebû Hureyre (r.) ji Pêxemberê Xwedê (s.) rîwayet kirine, gotiye: "Çi zehmetî, nesaxî, derd û keder, 'acizî û xemên ku tên serê misilmana heya ew stiriya dereka wî re here jî tevde dikevin ber gunehên wî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٨- عَنْ إِبْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: دَخَلْتُ عَلَى النَّبِيِّ ﷺ وَهُوَ يُوعَكُ، فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، إِنَّكَ تُوعَكُ وَعْكاً شَدِيداً، قَالَ: (أَجَلْ إِنِّي أُوعَكُ كَمَا يُوعَكُ رَجُلَانِ مِنْكُمْ) قُلْتُ: ذَلِكَ أَنَّ لَكَ أَجْرَيْنِ، قَالَ: (أَجَلْ ذَلِكَ كَذَلِكَ، مَا مِنْ مُسْلِمٍ يُصِيبُهُ أَذًى: شَوْكَةٌ فَمَا فَوْقَهَا إِلَّا

  

كَفَّرَ اللَّهُ بِهَا سَيِّئَاتِهِ، وَحُطَّتْ عَنْهُ ذُنُوبُهُ كَمَا تَحُطُّ الشَّجَرَةُ وَرَقَهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

38- Ji Îbnu Mes'ûd (r.) hatiye rîwayetkirin, digot: Ez çûm cem Pêxemberê Xwedê (s.) ku ta girtibû, min got: Ey Resûlê Xwedê (s.)! Tu bi dereceyek zêde nexweşiya tayê dikişînî. Got: "Belê ez wekî du mirovan ji we nexweşiya tayê dikêşim." Min got: Ew ji bo ku ji te re xêra du mirovan were? Got: "Erê wisa ye." "Misilmanek tuneye ku eziyeta kelemekî yan zêdetir bikêşe illa wê Xwedê te'ala bike kefaretê gunehên wî û gunehên wî dê ji wî biweşîne mîna dar belgê xwe diweşîne." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ يُرِدِ اللَّهُ بِهِ خَيْرًا يُصِبْ مِنْهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي

39- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, digot: Resûlê Xwedê te'ala (s.) gotiye: "Kesê ku Xwedê te'ala başiya wî bivê, bela tîne serê wî." *Buxari rîwayet kiriye.*

٤٠- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا يَتَمَنَّيَنَّ أَحَدُكُمُ الْمَوْتَ لِضُرٍّ أَصَابَهُ، فَإِنْ كَانَ لَا بُدَّ فَاعِلاً فَلْيَقُلِ: اللَّهُمَّ أَحْيِنِي مَا كَانَتِ الْحَيَاةُ خَيْرًا لِي، وَتَوَفَّنِي إِذَا كَانَتِ الْوَفَاةُ خَيْراً لِي). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

40- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin digot: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bila kesek ji we ji ber ku tengiyek lê peyda bûye daxwaziya mirinê neke. Eger neçar ma, bila bêje; Xwedayê min! Eger jiyan ji bo min baştir be, tu jiyana min bidomîne û eger mirin ji bo min baştir be tu min bimirîne." *Buxari û Muslim rîwayet kirine.*

٤١- عَنْ أَبِي عَبْدِ اللَّهِ خَبَّابِ بْنِ الأَرَتِّ ﷺ قَالَ: شَكَوْنَا إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَهُوَ مُتَوَسِّدٌ بُرْدَةً فِي ظِلِّ الْكَعْبَةِ، فَقُلْنَا: أَلَا تَسْتَنْصِرُ لَنَا؟ أَلَا تَدْعُو لَنَا؟ فَقَالَ: (قَدْ كَانَ مِنْ قَبْلِكُمْ يُؤْخَذُ الرَّجُلُ فَيُحْفَرُ لَهُ فِي الأَرْضِ فَيُجْعَلُ فِيهِ، ثُمَّ يُؤْتَى بِالْمِنْشَارِ فَيُوضَعُ عَلَى رَأْسِهِ فَيُجْعَلُ نِصْفَيْنِ، وَيُمْشَطُ بِأَمْشَاطِ الْحَدِيدِ مَا دُونَ لَحْمِهِ وَعَظْمِهِ مَا يَصُدُّهُ ذَلِكَ عَنْ دِينِهِ. وَاللَّهِ لَيُتِمَّنَّ اللَّهُ هَذَا الأَمْرَ حَتَّى يَسِيرَ الرَّاكِبُ مِنْ صَنْعَاءَ إِلَى حَضْرَمَوْتَ لَا يَخَافُ إِلَّا اللَّهَ وَالذِّئْبَ عَلَى غَنَمِهِ وَلَكِنَّكُمْ تَسْتَعْجِلُونَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

وَفِي رِوَايَةٍ: (وَهُوَ مُتَوَسِّدٌ بُرْدَةً وَقَدْ لَقِينَا مِنَ الْمُشْرِكِينَ شِدَّةً)

41- Ji Ebû ‘Ebdullah Xebbab kurê Eret (r.) hatiye rîwayetkirin, digot: Me şikayeta/giliyê halê xwe ji Pêxemberê Xwedê (s.) re kir. Wî jî li ber siya Ke‘beyê paldabû kurkê xwe û me jê re got: Ma tu ji me re daxwaza serkeftinê ji Xwedê nakî? Ma tu ji bo me dua nakî? Got: “Di beriya we de mirovek dihata girtin, jê re çalek dihate kolan, dihate avêtin di wê çalê de, paşê birrek dianîn, ew bi birrekê dikirin du qet, goştê wî ji hestiyan bi şehên hesinî şe dikirin, dîsa jî ji dînê wî venegerandin. Ez bi Xwedê te‘ala qesem dikim wê Xwedê te‘ala vî emrî/dînî temam bike/bibe kemalê. Û sîwarek ji Sen‘a wê here Hezremûtê, tirsa wî ji xeyrê Xwedê te‘ala û gur ji bo pez, yê tunebe, belê hûn zêde ‘ecele dikin.” Buxarî rîwayet kiriye.

Di rîwayetek din de: Pêxemberê Xwedê (s.) paldabû kurkê xwe, me ji destên muşrikan pir eziyet/cefa dikişand.

٤٢- عَنْ إِبْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: لَمَّا كَانَ يَوْمُ حُنَيْنٍ، آثَرَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ نَاساً فِي الْقِسْمَةِ، فَأَعْطَى الأَقْرَعَ بْنَ حَابِسٍ مِائَةً مِنَ الأَبِلِ، وَأَعْطَى عُيَيْنَةَ بْنَ حِصْنٍ مِثْلَ ذَلِكَ، وَأَعْطَى نَاساً مِنْ أَشْرَافِ الْعَرَبِ وَآثَرَهُمْ يَوْمَئِذٍ فِي الْقِسْمَةِ فَقَالَ رَجُلٌ: وَاللَّهِ إِنَّ هَذِهِ قِسْمَةٌ مَا عُدِلَ فِيهَا وَمَا أُرِيدَ فِيهَا وَجْهُ اللَّهِ، فَقُلْتُ: وَاللَّهِ لأُخْبِرَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ، فَأَتَيْتُهُ فَأَخْبَرْتُهُ بِمَا قَالَ، فَتَغَيَّرَ وَجْهُهُ حَتَّى كَانَ كَالصِّرْفِ، ثُمَّ قَالَ: (فَمَنْ يَعْدِلُ إِذَا لَمْ يَعْدِلِ اللَّهِ وَرَسُولُهُ) ثُمَّ قَالَ: (يَرْحَمُ اللَّهُ مُوسَى، قَدْ أُوذِيَ بِأَكْثَرَ مِنْ هَذَا فَصَبَرَ) فَقُلْتُ: لَا جَرَمَ لَا أَرْفَعُ إِلَيْهِ بَعْدَهَا حَدِيثًا. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

42- Ji Îbnu Mes‘ûd (r.) hatiye rîwayetkirin, digot: Çaxa herba Huneynê Resûlê Xwedê (s.) malê xenîmetê zêde dida hinek merivan; sed deve dabû Eqre‘ê kurê Habis, ewqas jî dabû ‘Uyeyne kurê Hisn û dabû çend merivên din jî ji mezin û pêşîvanên Qureyşiyan. Li ser vê bûyerê mirovekî got: Wellahî ‘edalet di vê teqsîmkirina malê xenîmetê de nehatiye kirin û di vê teqsîmê de riza Xwedê nehatiye qesdkirin. Îbnu Mes‘ûd got: Qesem dikim bi Xwedê: Ezê Pêxember (s.) bi vê gotinê xeberdar bikim, êdî ez çûm cem Resûlê Xwedê (s.) û min jê re got. Rûyê Pêxember (s.) bû wekî sêleke sor, paşê got: “Heke Xwedê û Resûlê wî ‘edaletê nekin, ma kî yê bike? Pişt re got: Xwedê Rehmê li Mûsa bike; ji vê zêdetir eziyet û cefa kişandiye lêbelê

sebr kir." Min got: "Piştî vê yekê qet xebera tu kesî ji Pêxember re neqil nakim." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٣- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا أَرَادَ اللَّهُ بِعَبْدِهِ الْخَيْرَ عَجَّلَ لَهُ الْعُقُوبَةَ فِي الدُّنْيَا، وَإِذَا أَرَادَ اللَّهُ بِعَبْدِهِ الشَّرَّ أَمْسَكَ عَنْهُ بِذَنْبِهِ حَتَّى يُوَافِيَ بِهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ) وَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (إِنَّ عِظَمَ الْجَزَاءِ مَعَ عِظَمِ الْبَلَاءِ، وَإِنَّ اللَّهَ تَعَالَى إِذَا أَحَبَّ قَوْمًا ابْتَلَاهُمْ، فَمَنْ رَضِيَ فَلَهُ الرِّضَا، وَمَنْ سَخِطَ فَلَهُ السُّخْطُ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

43- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin, digot: Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Dema Xwedê te'ala xêra 'ebdê xwe bivê hê li dunyayê cezayê wî didiyê û dema ku Xwedê te'ala neqenciya 'ebdê xwe bivê cezayê wî dihêle heya roja qiyametê da ku cezayê xwe li wir bikşîne." Resûlê Xwedê te'ala (s.) gotiye: "Mukafata mezin li gor bela a mezin e, dema Xweda te'ala ji qewmekî hezbike wan xwedanbela dike. Vêca kesê ku razîbûnê nîşan bide jê re razîbûn heye û kesê ku nerazîbûnê nîşan bidê jê re nerazîbûn heye." *Tirmizî ev hedîs rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

٤٤- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: كَانَ ابْنٌ لِأَبِي طَلْحَةَ ﷺ يَشْتَكِي، فَخَرَجَ أَبُو طَلْحَةَ فَقُبِضَ الصَّبِيُّ، فَلَمَّا رَجَعَ أَبُو طَلْحَةَ قَالَ: مَا فَعَلَ ابْنِي، قَالَتْ أُمُّ سُلَيْمٍ، وَهِيَ أُمُّ الصَّبِيِّ: هُوَ أَسْكَنُ مَا كَانَ، فَقَرَّبَتْ لَهُ الْعَشَاءَ فَتَعَشَّى، ثُمَّ أَصَابَ مِنْهَا، فَلَمَّا فَرَغَ قَالَتْ: وَارُوا الصَّبِيَّ، فَلَمَّا أَصْبَحَ أَبُو طَلْحَةَ أَتَى رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَأَخْبَرَهُ، فَقَالَ: (أَعْرَسْتُمُ اللَّيْلَةَ) قَالَ: نَعَمْ، قَالَ: (اللَّهُمَّ بَارِكْ لَهُمَا) فَوَلَدَتْ غُلَامًا، فَقَالَ لِي أَبُو طَلْحَةَ: احْمِلْهُ حَتَّى تَأْتِيَ بِهِ النَّبِيَّ ﷺ وَبَعَثَتْ مَعَهُ بِتَمَرَاتٍ، فَقَالَ: (أَمَعَهُ شَيْءٌ؟) قَالَ: نَعَمْ، تَمَرَاتٌ، فَأَخَذَهَا النَّبِيُّ ﷺ فَمَضَغَهَا ثُمَّ أَخَذَهَا مِنْ فِيهِ فَجَعَلَهَا فِي فِي الصَّبِيِّ، ثُمَّ حَنَّكَهُ وَسَمَّاهُ عَبْدَ اللَّهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم

وَفِي رِوَايَةٍ لِلْبُخَارِيِّ: قَالَ إِبْنُ عُيَيْنَةَ: فَقَالَ رَجُلٌ مِنَ الأَنْصَارِ: فَرَأَيْتُ تِسْعَةَ أَوْلَادٍ كُلُّهُمْ قَدْ قَرَءُوا الْقُرْآنَ.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: مَاتَ ابْنٌ لِأَبِي طَلْحَةَ مِنْ أُمِّ سُلَيْمٍ فَقَالَتْ لِأَهْلِهَا: لَا تُحَدِّثُوا أَبَا طَلْحَةَ بِابْنِهِ حَتَّى أَكُونَ أَنَا أُحَدِّثُهُ، فَجَاءَ فَقَرَّبَتْ إِلَيْهِ عَشَاءً فَأَكَلَ وَشَرِبَ، ثُمَّ تَصَنَّعَتْ لَهُ أَحْسَنَ مَا كَانَتْ تَصْنَعُ قَبْلَ ذَلِكَ فَوَقَعَ بِهَا،فَلَمَّا أَنْ رَأَتْ أَنَّهُ قَدْ شَبِعَ وَأَصَابَ مِنْهَا قَالَتْ: يَا أَبَا طَلْحَةَ، أَرَأَيْتَ لَوْ أَنَّ قَوْمًا أَعَارُوا عَارِيَتَهُمْ أَهْلَ بَيْتٍ فَطَلَبُوا عَارِيَتَهُمْ، أَلَهُمْ أَنْ يَمْنَعُوهُمْ؟ قَالَ: لَا، فَقَالَتْ: فَاحْتَسِبِ ابْنَكَ، قَالَ: فَغَضِبَ ثُمَّ قَالَ: تَرَكْتِنِي حَتَّى إِذَا تَلَطَّخْتُ ثُمَّ أَخْبَرْتِنِي بِابْنِي، فَانْطَلَقَ حَتَّى أَتَى رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَأَخْبَرَهُ بِمَا كَانَ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (بَارَكَ اللَّهُ لَكُمَا فِي لَيْلَتِكُمَا) قَالَ: فَحَمَلَتْ، قَالَ: وَكَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فِي سَفَرٍ وَهِيَ مَعَهُ، وَكَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا أَتَى الْمَدِينَةَ مِنْ سَفَرٍ لَا يَطْرُقُهَا طُرُوقًا، فَدَنَوْا مِنَ الْمَدِينَةِ فَضَرَبَهَا الْمَخَاضُ، فَاحْتَبَسَ عَلَيْهَا أَبُو طَلْحَةَ، وَانْطَلَقَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ قَالَ: يَقُولُ أَبُو طَلْحَةَ: إِنَّكَ لَتَعْلَمُ يَا رَبِّ أَنَّهُ يُعْجِبُنِي أَنْ أَخْرُجَ مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ إِذَا خَرَجَ وَأَدْخُلَ مَعَهُ إِذَا دَخَلَ، وَقَدِ احْتَبَسْتُ بِمَا تَرَى، تَقُولُ أُمُّ سُلَيْمٍ: يَا أَبَا طَلْحَةَ مَا أَجِدُ الَّذِي كُنْتُ أَجِدُ، انْطَلِقْ، فَانْطَلَقْنَا وَضَرَبَهَا الْمَخَاضُ حِينَ قَدِمَا فَوَلَدَتْ غُلَامًا، فَقَالَتْ لِي أُمِّي: يَا أَنَسُ لَا يُرْضِعْهُ أَحَدٌ حَتَّى تَغْدُوَ بِهِ عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ، فَلَمَّا أَصْبَحَ احْتَمَلْتُهُ فَانْطَلَقْتُ بِهِ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ. وَ ذَكَرَ تَمَامَ الْحَدِيثِ.

44- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Kurekî Ebû Telhe (r.) nexweş bû. Ebû Telhe ji mala xwe derket kurik jî mir, wextê Ebû Telhe vegeriya hate mala xwe, got: Kanê kurê min? Diya kurik Ummu Suleymê got: Kurik ji berê baştir e. Şîva wî hazir kir û danî ber, şîva xwe xwar, çû livîna xwe, dema ji livîna xwe vala bû, Ummu Suleymê got: Kurik miriye. Wextê li Ebû Telhe dibe sibeh, diçe cem Resûlê Xwedê (s.) ew tiştên di şev de borîn jê re dibêje. Resûlullah got: "Hûn ew şev li ba hev razan?" Ebû Telhe got: Belê. Resûlê Xwedê (s.) got: "Xwedayê min! Tu şeva wan pîroz bike." Paşê kurekî Ummu Suleymê çêbû.

Enes dibêje: Ebû Telhe ji min re got: Vî kurikî û van xurma hilgire bibe cem Pêxember (s.). Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Digel wî tiştek heye?" Enes: Belê hinek xurme hene. Pêxemberê Xwedê (s.) ew xurme kirine devê xwe

û cût, paşê ewan xurma xiste devê kurik û pidûw/esmanê devê wî ve bir û anî, navê wî danî 'Ebdullah. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

Di rîwayeta Buxarî de; Îbnu 'Uyeyne got: Mirovekî ji Ensariyan got: "Min ji vî 'Ebdullahê han neh kur dîtin ku her nehan Qur'ana Pîroz xwendibûn/ ji ber kiribûn."

Di rîwayeta Muslim de; ji Ummu Suleymê kurek yê Ebû Telhe wefat kiribû. Ummu Suleymê ji ehlê mala xwe re got: Hûn ji Ebû Telhe re nebêjin kurê te miriye, heta ez bi xwe jê re nebêjim. Vêca Ebû Telhe hate mala xwe. Ummu Suleymê jê re şîv anî, şîva xwe xwar û vexwar, paşê Ummu Suleymê ji berê çêtir xwe jê re ediland. Ebû Telhe digel Ummu Suleymê suhbeta xwe derbas kir û bi hev re raketin. Pişt re Ummu Suleymê got: Ya Ebû Telhe! Eger hinek mirov tiştekî xwe bi emanetî bidine hinekan, paşê emanetê xwe ji wan bixwazin ew kesana dikarin emanetê wan nedine wan?

Ebû Telhe got: Na.

Ummu Suleym:

–Kurê te jî emanetê Xwedê bû. Wî jî emanetê xwe wergirt. Tu jî sebrê bike/xêra wê ji xwe re hesab bike. Ebû Telhe xeyidî û paşê got:

–Piştî vî qasî hanê nû tu mirina kurê min ji min re dibêje? Ebû Telhe derket û çû cem Pêxember (s.) ev mesele jê re got. Pêxember (s.) jî ferman kir: "Xwedê te'ala şeva we ji we re mubarek bike." Enes dibêje:

–Ummu Suleym wê şevê bi hamle bû.

Enes dibêje: Pêxember (s.) di seferekê de bû. Ummu Suleym jî digel wî bû. Pêxember (s.) zemanê ku ji seferê dihate Medînê bi şev daxilî Medînê nedibû. Vêca Pêxember (s.) û digel sehabiyan li dora Medînê man. Ummu Suleym kete ber hamlê xwe de. Ebû Telhe digel Ummu Suleymê ma û Pêxember (s.) hate Medînê. Enes:

–Ebû Telhe digot: Xwedayê min! Tu dizanî ku ez dixwazim digel Pêxember (s.) dema (ji Medînê) derkeve pê re derkevim û bikevê (Medînê) pê re bikevim. Vêca Tu vî halê min dibînî ku bi Ummu Suleymê ve lebikîme; mame paşve. Ummu Suleym:

–Ebû Telhe! Sanciyê min ji min çûn. De ka rêya xwe bidomîne. Ebû Telhe:

Me jî rêya xwe berdewam kir. Zemanê em ketin Medînê, kurek jê re çêbû. Enes:

Dayika min Ummu Suleymê ji min re got:

–Ya Enes! Bila tukes vî nemijîne heta tu wî serê sibehê bibî cem Pêxemberê Xwedê (s.). Enes: Zemanê bû sibeh min ew hilgirt û bir bal Resûlê Xwedê (s.). Gotina jorê domand.

٤٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَيْسَ الشَّدِيدُ بِالصُّرَعَةِ، إِنَّمَا الشَّدِيدُ الَّذِي يَمْلِكُ نَفْسَهُ عِنْدَ الْغَضَبِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

45- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, bêşik Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hêzbûnî ne bi gemşe/gulaşê bikeve ser dilê hevalê xwe. Hêzbûnî ew e ku di qehrê de bi xwe bikaribe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٦- عَنْ سُلَيْمَانَ بْنِ صُرَدٍ ﷺ قَالَ: كُنْتُ جَالِساً مَعَ النَّبِيِّ ﷺ وَرَجُلَانِ يَسْتَبَّانِ وَأَحَدُهُمَا قَدْ احْمَرَّ وَجْهُهُ وَانْتَفَخَتْ أَوْدَاجُهُ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنِّي لأَعْلَمُ كَلِمَةً لَوْ قَالَهَا ذَهَبَ عَنْهُ مَا يَجِدُ، لَوْ قَالَ أَعُوذُ بِاللَّهِ مِنَ الشَّيْطَانِ الرَّجِيمْ ذَهَبَ عَنْهُ مَا يَجِدُ) فَقَالُوا لَهُ: إِنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (تَعَوَّذْ بِاللَّهِ مِنَ الشَّيْطَانِ الرَّجِيمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

46- Ji Suleyman kurê Surid hatiye rîwayetkirin got: Ez digel Pêxemberê Xwedê (s.) rûniştîbûm, du merivan gotinên nebaş ji hevdu re digotin, rûyê yekî ji wan zêde sor bûbû û rayên stûyê wî jî zêde werimîbûn. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ez gotinekê dizanim, eger ew wê gotinê bêje yê ew hal jê here." Eger bêje: "Xwe davêjim beṛ dergahê Xwedê ku min ji şeytanê qewirandî biparêze." Vêca em çûn, me jê re got: Pêxemberê Xwedê (s.) dibêje bila gotina; "xwe davêjim ber dergahê Xwedê ku min ji şeytanê qewirandî biparêze" bêje. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٧- عَنْ مُعَاذِ بْنِ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ كَظَمَ غَيْظاً وَهُوَ قَادِرٌ عَلَى أَنْ يُنْفِذَهُ، دَعَاهُ اللَّهُ سُبْحَانَهُ وَتَعَالَى عَلَى رُؤُوسِ الْخَلَائِقِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ حَتَّى يُخَيِّرَهُ مِنَ الْحُورِ الْعِينِ مَا شَاءَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرمِذِي، وَقَالَ التِّرمِذِي: إِنَّهُ حَدِيثٌ حَسَنٌ.

47- Ji Mu'az kurê Enes (r.) hatiye rîwayetkirin, bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Kesê digel ku dikarê qehra xwe pêk bîne qehra xwe daqurtîne, Xwedê te'ala di roja qiyametê de di nav mehlûqan de gazî wî dike, di bijartina horiyan de wî serbest dike. *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye: Ev hedîs hesen e.*

٤٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَجُلاً قَالَ لِلنَّبِيِّ ﷺ: أَوْصِنِي، قَالَ: (لَا تَغْضَبْ) فَرَدَّدَ مِرَارًا قَالَ: (لَا تَغْضَبْ). رَوَاهُ البُخَارِي.

48-Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Mirovekî ji Pêxemberê Xwedê (s.) re got: Şîretekê li min bike. Resûlê Xwedê (s.) got: Hêrs nebe. Wî çend caran dubare kir. Resûlê Xwedê (s.) got: Hêrs nebe. *Buxarî û rîwayet kirye.*

٤٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا يَزَالُ الْبَلَاءُ بِالْمُؤْمِنِ وَالْمُؤْمِنَةِ فِي نَفْسِهِ وَوَلَدِهِ وَمَالِهِ حَتَّى يَلْقَى اللَّهَ تَعَالَى وَمَا عَلَيْهِ خَطِيئَةٌ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

49-Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Di derbarê zarok û mal û nefsa wan de, bela têne serê mêr û jina mu’min/bawermend, ta ku dema çûne hizûra Xwedê te‘ala, qet guneh li ser wan nemîne. *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye: Ev hedîs hesen û sehîh e.*

٥٠- عَنْ اِبْنَ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: قَدِمَ عُيَيْنَةُ بْنُ حِصْنٍ فَنَزَلَ عَلَى ابْنِ أَخِيهِ الْحُرِّ بْنِ قَيْسٍ، وَكَانَ مِنَ النَّفَرِ الَّذِينَ يُدْنِيهِمْ عُمَرُ ﷺ وَكَانَ الْقُرَّاءُ أَصْحَابَ مَجْلِسِ عُمَرَ ﷺ وَمُشَاوَرَتِهِ كُهُولاً كَانُوا أَوْ شُبَّانًا، فَقَالَ عُيَيْنَةُ لِابْنِ أَخِيهِ: يَا ابْنَ أَخِي، هَلْ لَكَ وَجْهٌ عِنْدَ هَذَا الأَمِيرِ، فَاسْتَأْذِنْ لِي عَلَيْهِ، فَاسْتَأْذَنَ فَأَذِنَ لَهُ عُمَرُ، فَلَمَّا دَخَلَ قَالَ: هِيَ يَا ابْنَ الْخَطَّابِ: فَوَاللَّهِ مَا تُعْطِينَا الْجَزْلَ وَلَا تَحْكُمُ فِينَا بِالْعَدْلِ، فَغَضِبَ عُمَرُ ﷺ حَتَّى هَمَّ أَنْ يُوقِعَ بِهِ، فَقَالَ لَهُ الْحُرُّ: يَا أَمِيرَ الْمُؤْمِنِينَ، إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى قَالَ لِنَبِيِّهِ ﷺ: (خُذِ الْعَفْوَ وَأْمُرْ بِالْعُرْفِ وَأَعْرِضْ عَنِ الْجَاهِلِينَ) وَإِنَّ هَذَا مِنَ الْجَاهِلِينَ، وَاللَّهِ مَا جَاوَزَهَا عُمَرُ حِينَ تَلَاهَا، وَكَانَ وَقَّافًا عِنْدَ كِتَابِ اللَّهِ تَعَالَى. رَوَاهُ البُخَارِي.

50-Ji Îbnu ‘Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin, got: ‘Uyeyne kurê Hisn hate Medînê û çû mala biraziyê xwe el-Hurr kurê Qeys, ewê ku nêzîkî ‘Umer kurê Xettab (r.) bû, civat û şêwirmendên wî çi kal û xort tevde xwendevan bûn. ‘Uyeyne ji biraziyê xwe re got: Birazî! Rûyê te li cem Emîr/‘Umer heye, vêca here ji bo min destûrê jê bixwaze da ku digel wî biaxivim. Çû destûr jê xwest, Îmamê ‘Umer (r.) destûr da. Zemanê ku ‘Uyeyne çû balê

got: Hey kurê Xettab! Wellahî ne te tiştek daye me û ne jî tu bi ‘edaletê hukum dikî. Li ser vê yekî hêrsa Îmam ‘Umer rabû ku tiştekî bîne serê wî. El-Hurr got: Ya Emîrê mu’minan Xweda te‘ala ji Resûlê xwe re (s.) gotiye: “Rêya ‘efwê bigire û bi qenciyê emir bike û dev ji cahilan –nezanan– berde.” Bêşik evê han –‘Uyeyne– ji nezana ye. El-Hurr got: Ez qesem dikim bi Xwedê te‘ala zemanê ayet hate xwendin, êdî ‘Umer jê derbas nebû. Li kitêba Xwedê te‘ala zêde miqate bû.[1] *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥١- عَنْ اِبْنِ مَسْعُودٍ ﷺ أَنَّ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّهَا سَتَكُونُ بَعْدِي أَثَرَةٌ وَأُمُورٌ تُنْكِرُونَهَا) قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ فَمَا تَأْمُرُنَا؟ قَالَ: (تُؤَدُّونَ الْحَقَّ الَّذِي عَلَيْكُمْ وَتَسْأَلُونَ اللَّهَ الَّذِي لَكُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٍ.

51- Ji Îbnu Mes‘ûd (r.) hatiye rîwayetkirin, ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Bêşik piştî min wê hindek tiştên ne berkeftî –bêrêtî– dê peyda bibin. Sehabiyan gotin: Ya Resûlê Xwedê! Wî zemanî tu çi emrî me dikî? Pêxember (s.) got: “Huqûqên ku li ser we ne, wan pêk bînin û huqûqên ku ji bona we hene, hûn ji Xwedê te‘ala bixwazin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٢- عَنْ أَبِي يَحْيَ أُسَيْدِ بْنِ حُضَيْرٍ ﷺ أَنَّ رَجُلاً مِنَ الأَنْصَارِ قَالَ: يَارَسُولَ اللَّهِ أَلَا تَسْتَعْمِلُنِي كَمَا اسْتَعْمَلْتَ فُلَانًا؟ فَقَالَ: (إِنَّكُمْ سَتَلْقَوْنَ بَعْدِي أَثَرَةً فَاصْبِرُوا حَتَّى تَلْقَوْنِي عَلَى الْحَوْضِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٍ.

52- Ji Ebû Yehya Useyd kurê Hudeyr (r.) hatiye rîwayetkirin, bêşik miroveki ji Ensariyan got: Ya Qasidê Xwedê! Ma tu min di karekî de nakî wezîfedar wekî ku te filan kes kiriye wezîfedar? Resûlê Xwedê got: “Hûn dê piştî min rastî bêrêtiyan werin, veca sebrê bikin, ta hûn li ser hewzên Kewserê rastî min werin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٣- عَنْ أَبِي إِبْرَاهِيمَ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ أَبِي أَوْفَى ﷺ أَنَّهَا أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فِي بَعْضِ أَيَّامِهِ الَّتِي لَقِيَ فِيهَا الْعَدُوَّ إِنْتَظَرَ حَتَّى إِذَا مَالَتِ الشَّمْسُ قَامَ فِيهِمْ، فَقَالَ:(يَا أَيُّهَا النَّاسُ لَا

1 Yanî li gor ‘erna xwe silbûna xwe hereket neke. Çunkî Qur’an Hakim bû. Exlaqê wan Qur’an bû. Nefsa wan ne hakim bû. Xwedê ji wan razî be.

  

تَتَمَنَّوْا لِقَاءَ الْعَدُوِّ، وَاسْأَلُوا اللَّهَ الْعَافِيَةَ، فَإِذَا لَقِيتُمُوهُمْ فَاصْبِرُوا، وَاعْلَمُوا أَنَّ الْجَنَّةَ تَحْتَ ظِلَالِ السُّيُوفِ) ثُمَّ قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (اَللَّهُمَّ مُنْزِلَ الْكِتَابِ، وَمُجْرِيَ السَّحَابِ، وَهَازِمَ الأَحْزَابِ، اَهْزِمْهُمْ وَانْصُرْنَا عَلَيْهِمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

53- Ji Ebû Îbrahîm 'Ebdullah kurê Ebû Ewfa (r.) hatiye rîwayetkirin. Pêxemberê Xwedê (s.) rojekê ku rastî dijmin hat heta rojê meyl da (nîvro şikest) rawestiya. Di nav însanan de rabû ser piya û got: "Gelî însanan! Hûn daxwaza rast hatina dijmin nekin û hûn ji Xwedê 'afiyet û serketinê bixwazin. Lê wextê hûn rastî dijmin hatin jî sebr bikin û hûn baş bizanibin ku cennet di binê sîa şûran de ye." Paşê jî Pêxemberê Xwedê (s.) ev dua xwend: "Xwedayê ku kitêb nazil kiriye, ewr ajotine, firqe û ehzab binxistne! Tu ewan binbixî û li hemberê wan arîkariya me bikî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## الصِّدْق بَابُ

## SIDQ/RASTGOTIN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿يَاأَيُّهَا الَّذِينَ أَمَنُوا اتَّقُوا اللَّهَ وَكُونُوا مَعَ الصَّادِقِينَ﴾

*"Gelî ewên bawerî anîne! Xwe ji (ezabê) Xwedê te'ala biparêzin û bi rastgoyan re bin."*[1]

﴿.......وَالصَّادِقِينَ و الصَّادِقَاتِ .......﴾

*"...mêrên rastgo û jinên rastgo..."*[2]

﴿فَلَوْ صَدَقُوا اللَّهَ لَكَانَ خَيْراً لَهُمْ﴾

*"Vêca eger ew bi Xwedê te'ala re rast bana yê ji wan re çêtir bana."*[3]

٥٤- عَنْ إِبْنِ مَسْعُودٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ الصِّدْقَ يَهْدِي إِلَى الْبِرِّ، وَإِنَّ الْبِرَّ يَهْدِي إِلَى الْجَنَّةِ، وَإِنَّ الرَّجُلَ لَيَصْدُقُ حَتَّى يُكْتَبَ عِنْدَ اللَّهِ صِدِّيقًا، وَإِنَّ الْكَذِبَ يَهْدِي إِلَى الْفُجُورِ. وَإِنَّ الْفُجُورَ يَهْدِي إِلَى النَّارِ، وَإِنَّ الرَّجُلَ لَيَكْذِبُ حَتَّى يُكْتَبَ عِنْدَ اللَّهِ كَذَّاباً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم

1 Tewbe, 9/119.
2 Ehzab, 33/35
3 Muhemmed, 47/21.

54- Ji Îbnu Mes'ûd (r.), Resûlê Xwedê (s.), gotiye: "Rastî berê însan dide bal başiyê ve û başî jî berê însan dide bal cennetê ve û mirov rast dibêje, rastiyê ji xwe re dike exlaq heta li cem Xwedê te'ala ji siddîqan/rastgoyan tê nivîsandin. Bêguman derew jî berê însan dide bal nebaşiyê ve û nebaşî jî berê însan dide bal êgir ve û mirov derewan dike heta ku li cem Xwedê te'ala ji derewkeran tê nivîsandin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٥- عَنْ أَبِي مُحَمَّدٍ الْحَسَنِ بْنِ عَلِيِّ بْنِ أَبِي طَالِبٍ ﷺ قَالَ: حَفِظْتُ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ: (دَعْ مَا يَرِيبُكَ إِلَى مَا لَا يَرِيبُكَ، فَإِنَّ الصِّدْقَ طُمَأْنِينَةٌ، وَالْكِذْبَ رِيبَةٌ).

رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ صَحِيحٌ.

55- Ji Ebû Muhemmed Hesen kurê 'Elî kurê Ebû Talib (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Min ji Resûlê Xwedê (s.) ji ber kiriye, digot: "Tişta te bixe şikê dev jê berde, here bal tişta ku te naxe şekê. Lewra miheqeq rastbêjî sikûn û rawilşiya dil e û heçîka derew e nerehetiya qelbê ye." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye sehîh e.*

٥٦- عَنْ أَبِي سُفْيَانَ صَخْرِ بْنِ حَرْبٍ ﷺ فِي حَدِيثِهِ الطَّوِيلِ فِي قِصَّةِ هِرَقْلَ: قَالَ هِرَقْلُ: فَمَاذَا يَأْمُرُكُمْ؟ يَعْنِي النَّبِيَّ ﷺ، قَالَ أَبُو سُفْيَانَ: قُلْتُ: يَقُولُ: (اُعْبُدُوا اللَّهَ وَحْدَهُ لَا تُشْرِكُوا بِهِ شَيْئًا، وَاتْرُكُوا مَا يَقُولُ آبَاؤُكُمْ) وَيَأْمُرُنَا (بِالصَّلَاةِ والصِّدْقِ وَالْعَفَافِ وَالصِّلَةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

56- Ji Ebû Sufyan Sexr kurê Herb (r.) di hedîsa xwe ya dirêj de digel Hireql, Hireql gotiye: "Ew mirov –Muhemmed– çi emrê we dike? Ebû Sufyan gotiye: Min got: Ew dibêje: Ji Xwedê te'ala tenê re îbadetê bikin, hemparan jê re çênekin, gotinên bav û kalên xwe terk bikin û emrê me bi kirina nimêjê, bi gotina rast, bi 'îffet û miqatebûna li xisman dike. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٧- عَنْ أَبِي ثَابِتٍ، وَقِيلَ أَبِي سَعِيدٍ، وَقِيلَ أَبِي الْوَلِيدِ سَهْلِ بْنِ حُنَيْفٍ، وَهُوَ بَدْرِيٌّ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (مَنْ سَأَلَ اللَّهَ تَعَالَى الشَّهَادَةَ بِصِدْقٍ بَلَّغَهُ اللَّهُ مَنَازِلَ الشُّهَدَاءِ، وَإِنْ مَاتَ عَلَى فِرَاشِهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

57- Ji Ebû Sabit yan ji Ebû Se'îd yan ji Ebû el-Welîd Sehl kurê Huneyf el-Bedrî (r.) hatiye rîwayetkirin, bêşik Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî bi dil û can şehadetê ji Xwedê te'ala Bixweze li ser ciyê xwe bimre jî, Xwedê te'ala wê ewî bigîhîne meqam û derecê şehîdan." *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (غزَا نَبِيٌّ مِنَ الأَنْبِيَاءِ فَقَالَ لِقَوْمِهِ: لَا يَتْبَعَنِّي رَجُلٌ مَلَكَ بُضْعَ إمْرَأَةٍ وَهُوَ يُرِيدُ أَنْ يَبْنِيَ بِهَا وَلَمَّا يَبْنِ بِهَا، وَلَا أَحَدٌ بَنَى بُيُوتَ وَلَمْ يَرْفَعْ سُقُوفَهَا، وَلَا أَحَدٌ اشْتَرَى غَنَماً أَوْ خَلِفَاتٍ وَهُوَ يَنْتَظِرُ أَوْلَادَهَا، فَغَزَا فَدَنَ مِنَ الْقَرْيَةِ صَلَاةَ الْعَصْرِ أَوْ قَرِيبًا مِنْ ذَلِكَ، فَقَالَ لِلشَّمْسِ: إِنَّكِ مَأْمُورَةٌ، وَأَنَا مَأْمُورٌ. اَللَّهُمَّ احْبِسْهَا عَلَيْنَا، فَحُبِسَتْ حَتَّى فَتَحَ اللَّهُ عَلَيْهِ، فَجَمَعَ الْغَنَائِمَ فَجَاءَتْ يَعْنِي: اَلنَّارَ لِتَأْكُلَهَا فَلَمْ تَطْعَمْهَا، فَقَالَ: إِنَّ فِيكُمْ غُلُولاً؛ فَلْيُبَايِعْنِي مِنْ كُلِّ قَبِيلَةٍ رَجُلٌ. فَلَزِقَتْ يَدُ رَجُلٍ بِيَدِهِ، فَقَالَ: فِيكُمُ الْغُلُولُ فَلْيُبَايِعْنِي قَبِيلَتُكَ، فَلَزِقَتْ يَدُ رَجُلَيْنِ أَوْ ثَلَاثَةٍ بِيَدِهِ، فَقَالَ: فِيكُمُ الْغُلُولُ، فَجَاؤُوا بِرَأْسٍ مِثْلِ رَأْسِ بَقَرَةٍ مِنَ الذَّهَبِ فَوَضَعَهَ فَجَاءَتِ النَّارُ فَأَكَلَتْهَا، فَلَمْ تَحِلَّ الْغَنَائِمُ لأَحَدٍ قَبْلَنَا، ثُمَّ أَحَلَّ اللَّهُ لَنَا الْغَنَائِمَ لَمَّا رَأَى ضَعْفَنَا وَعَجْزَنَا فَأَحَلَّهَا لَنَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

58- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Pêxember (s.) gotiye: "Pêxemberek ji pêxemberan çû cîhadê. Vêca ji qewmê xwe re got: Ew kesê ku jinek ji xwe re anîbe, hê neçûbe nivîna wê, lêbelê dixwaze ku here nivîna wê, bila bi min re dernekeve cîhadê. Hem ew kesê ku xaniyek avakiribe, belê hê dîwarê wê bilind nekiribe bila ew jî dernekeve cîhadê. Hem ew kesê hinek pez û yan hinek deveh kirîbin û li hêviya zayina wan be, bila ew jî digel min dernekeve cîhadê.[1] Vêca derkete cîhadê û hat nêzîkî gundê (dijmin). Gava nimêja 'esrê bû, yan nêzîkî wî gavê bû. Vêca ji rojê re got: Ya rojê! Tu jî wekî min bin emr de yî. Xwedayê min! Tu wê bihêle ku neçe ava. Roj di cî de ma, heya ku Xwedê te'ala ew der li ser destê wî rizgar kir. Vêca malê xenîmetê kom kirin, ji asîmanan agirek hat da ku wî malî bixwe, lêbelê agir ew malê xenîmetê nexwar. Li ser vê yekê wî Pêxemberî got: "Di

1 Çunkî dê wî çaxî qelbê wî bimîne paşve, bi rastî cîhadê nake û bêsemere dimîne.

nav we de xiyanet çêbûye. Bila ji her qebîlekê mirovek bêt, digel min bî‘et bikin, vêca destê mirovekî bi destî wî ve ma, got: Ev xiyanet di we de peyda bûye, lazim e mirovên qebîla te hemû werin digel min bî‘et bikin. Destê du mirovan yan sê mirovan bi destê wî ve ma, got: Li nav we de xiyanet bûye. Vêca çûn bi qasê serê çêlekekê zêr anîn û danîn nav malê xenîmetê, êdî agir hat malê xenîmetê xwar. Malê xenîmetê ji ummetên beriya me re ne helal bû. Paşê Xwedê te‘ala malê xenîmetê li me –Ummeta Muhemmed– helal kir ji ber ku di me de ze‘îfî û bêqûwetî dît. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٩- عَنْ أَبِي خَالِدٍ حَكِيمِ بْنِ حِزَامٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (الْبَيِّعَانِ بِالْخِيَارِ مَا لَمْ يَتَفَرَّقَا، فَإِنْ صَدَقَا وَبَيَّنَا بُورِكَ لَهُمَا فِي بَيْعِهِمَا، وَإِنْ كَتَمَا وَكَذَبَا مُحِقَتْ بَرَكَةُ بَيْعِهِمَا).

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

59-Ji Ebû Xalid Hekîm kurê Hizam (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Baî‘ û muşterî –yê dikire û yê difroşe– biqîma xwe ne, heya ji hevûdin neqetin. Vêca eger rast gotin û hevûdin nexapandin, bereket dikeve bazara wan, eger hevûdin xapandin û derew kirin bereket ji bazara wan diçe.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ الْمُرَاقَبَة

## MURAQEBE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿الَّذِى يَرَىٰكَ حِينَ تَقُومُ وَتَقَلُّبَكَ فِى السَّاجِدِينَ﴾

“Ew Xwedayê ku wextê tu radibî (nimêjê) û gera te di nav secdebiran de te dibîne.”[1]

﴿وَهُوَ مَعَكُمْ أَيْنَ مَا كُنتُمْ﴾

“Hûn li kû bin ew digel we ye.”[2]

﴿إِنَّ اللَّهَ لَا يَخْفَىٰ عَلَيْهِ شَىْءٌ فِى الْأَرْضِ وَلَا فِى السَّمَاءِ﴾

“Bêguman ne di erdê de û ne jî di asîmanan de tiştek ji Xwedê veşartî nîne.”[3]

1 Şu‘era, 26/218-219.
2 Hedîd, 57/4.
3 Alî ‘Îmran, 3/5.

﴿إِنَّ رَبَّكَ لَبِالْمِرْصَادِ﴾

"Bêguman Rebbê te nobedarê kar û 'emelên 'îbadê xwe ye."[1]

﴿يَعْلَمُ خَائِنَةَ الأَعْيُنِ وَمَا تُخْفِي الصُّدُورُ﴾

"Ew, bi çavên xa'în û bi tiştên ku qelb vedişêrin dizane."[2]

٦٠- عَنْ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ ﷺ قَالَ: بَيْنَمَا نَحْنُ جُلُوسٌ عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ ذَاتَ يَوْمٍ، إِذْ طَلَعَ عَلَيْنَا رَجُلٌ شَدِيدُ بَيَاضِ الثِّيَابِ شَدِيدُ سَوَادِ الشَّعَرِ، لَا يُرَى عَلَيْهِ أَثَرُ السَّفَرِ وَلَا يَعْرِفُهُ مِنَّا أَحَدٌ حَتَّى جَلَسَ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَأَسْنَدَ رُكْبَتَيْهِ إِلَى رُكْبَتَيْهِ وَوَضَعَ كَفَّيْهِ عَلَى فَخِذَيْهِ، وَقَالَ: يَا مُحَمَّدُ أَخْبِرْنِي عَنِ الإِسْلَامِ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (الإِسْلَامُ أَنْ تَشْهَدَ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ وَأَنَّ مُحَمَّداً رَسُولُ اللَّهِ، وَتُقِيمَ الصَّلَاةَ، وَتُؤْتِيَ الزَّكَاةَ، وَتَصُومَ رَمَضَانَ، وَتَحُجَّ الْبَيْتَ إِنِ اسْتَطَعْتَ إِلَيْهِ سَبِيلاً) قَالَ: صَدَقْتَ، قَالَ فَعَجِبْنَا لَهُ يَسْأَلُهُ وَيُصَدِّقُهُ، قَالَ: فَأَخْبِرْنِي عَنِ الإِيمَانِ قَالَ: (أَنْ تُؤْمِنَ بِاللَّهِ وَمَلَائِكَتِهِ وَكُتُبِهِ وَرُسُلِهِ، وَالْيَوْمِ الْآخِرِ، وَتُؤْمِنَ بِالْقَدَرِ خَيْرِهِ وَشَرِّهِ) قَالَ: صَدَقْتَ، قَالَ: فَأَخْبِرْنِي عَنِ الإِحْسَانِ، قَالَ: (أَنْ تَعْبُدَ اللَّهَ كَأَنَّكَ تَرَاهُ، فَإِنْ لَمْ تَكُنْ تَرَاهُ فَإِنَّهُ يَرَاكَ) قَالَ: صَدَقتَ، قال: فَأَخْبِرْنِي عَنِ السَّاعَةِ، قَالَ: (مَا الْمَسْئُولُ عَنْهَا بِأَعْلَمَ مِنَ السَّائِلِ) قَالَ: فَأَخْبِرْنِي عَنْ أَمَارَتِهَا؟ قَالَ: (أَنْ تَلِدَ الْأَمَةُ رَبَّتَهَا، وَأَنْ تَرَى الْحُفَاةَ الْعُرَاةَ الْعَالَةَ رِعَاءَ الشَّاءِ يَتَطَاوَلُونَ فِي الْبُنْيَانِ) ثُمَّ انْطَلَقَ فَلَبِثْتُ مَلِيّاً، ثُمَّ قَالَ: (يَا عُمَرُ أَتَدْرِي مَنِ السَّائِلُ؟) قُلْتُ: اللَّهُ وَرَسُولُهُ أَعْلَمُ، قَالَ: (فَإِنَّهُ جِبْرِيلُ أَتَاكُمْ يُعَلِّمُكُمْ دِينَكُمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

60-Ji 'Umer kurê Xettab (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Rojekê em li cem Pêxemberê Xwedê (s.) bûn, ji nişkave mirovekî cilên wî pir spî, porê serê wî pir reş bi ser me de hat. Tu eserê seferê li ser wî xuya nedikir û tu kesî ji me ew nas nedikir. Heya hat li cem Pêxember (s.) rûnişt, çokên xwe

1 Fecr, 89/14.
2 Mu'min, 40/19.

gihand çokên wî, destên xwe danî ser ranên wî û got: "Ya Muhemmed! Îslam çi ye? Ji min re bêje." Pêxember (s.) got: "Îslam ew e ku tu bi zimanê xwe bêjî, bi qelbê xwe jî tesdîq bikî ku ji bilî Xwedê tu me'bûdê heq nînin û Muhemmed jî Qasidê wî ye. Tu nimêjê bikî, zikatê bidî, rojiya Remezanê bigrî û ger bikaribî herî Hecca Beytê." (Ewî mirovî) got: "Te rast got." Ji ber pirs û tesdîqkirina wî em jê şaş man. Got: "Îman çi ye? Ji min re bêje." Got: "Îman: Ew e ku tu baweriyê bi Xwedê û bi melekên wî, bi kitêbên wî, bi Pêxemberên wî, bi roja qiyametê bînî û baweriyê bi qederê çi xêr û çi şerê wê bînî." Got: "Te rast got. Îhsan çi ye? Ji min re bêje." Got: "Îhsan ew e ku tu îbadetê Xwedê bikî her wekî tu wî dibînî, eger tu wî nabînî jî lêbelê ew te dibîne." Got: "Qiyamet çi ye?" Got: "Yê ku jê tê pirsîn ji yê ku dipirse ne zanatir e." Got: "Nîşanên wê çi ne? Ji min re bêje." Got: "Ew e ku cariye seyyîdeta xwe biwelidîne[1] û ku tu mirovên tazî, pêxwas, xizan û şivanên pez in, bibînî ku di bilindkirina avahiyan de pêşbaziyê dikin." Paşê ew mirov rabû û çû. Ez demekê mam; paşê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ya 'Umer! Ewê ku pirs dikir ma te nas kir?" Min got: "Xwedê û Pêxemberê wî çêtir dizanin." Got: "Ew Cebraîl bû, hatibû ku dînê we hînî we bike." *Muslim rîwayet kiriye.*

٦١- عَنْ أَبِي ذَرٍّ جُنْدَبِ بْنِ جُنَادَةَ، وَ أَبِي عَبْدِالرَّحْمَنْ مُعَاذِ بْنِ جَبَلٍ ﷺعَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (اِتَّقِ اللَّهَ حَيْثُمَا كُنْتَ، وَأَتْبِعِ السَّيِّئَةَ الْحَسَنَةَ تَمْحُهَا، وَخَالِقِ النَّاسَ بِخُلُقٍ حَسَنٍ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

61- Ji Ebû Zerr Cundub kurê Cunadete (r.) û ji Ebû 'Ebdurrehman Mu'az kurê Cebel (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Tu li kuderê bî ji Xwedê bitirse, di pey guneh de xêrekê bike da ku ew xêr wî gunehî bibe, digel însanan bi exlaqê xweş mu'amele bike." *Tirmîzî rîwayet kiriye û gotiye: Ev hedîs hesen e.*

٦٢- عَنْ اِبْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: كُنْتُ خَلْفَ النَّبِيِّ ﷺ يَوْماً، فَقَالَ: (يَا غُلَامُ، إِنِّي أُعَلِّمُكَ كَلِمَاتٍ: اِحْفَظِ اللَّهَ يَحْفَظْكَ، اِحْفَظِ اللَّهَ تَجِدْهُ تُجَاهَكَ، إِذَا سَأَلْتَ فَاسْأَلِ اللَّهَ، وَإِذَا اسْتَعَنْتَ فَاسْتَعِنْ بِاللَّهِ، وَاعْلَمْ أَنَّ الْأُمَّةَ لَوِ اجْتَمَعَتْ عَلَى أَنْ يَنْفَعُوكَ بِشَيْءٍ لَمْ يَنْفَعُوكَ

[1] Eva kînayet e ji windabûna huqûqan. Yanî dê û bav mu'amela koletiyê ji ewladê xwe bibînin.

إِلَّا بِشَيْءٍ قَدْ كَتَبَهُ اللَّهُ لَكَ، وَإِنْ اجْتَمَعُوا عَلَى أَنْ يَضُرُّوكَ بِشَيْءٍ لَمْ يَضُرُّوكَ إِلَّا بِشَيْءٍ قَدْ كَتَبَهُ اللَّهُ عَلَيْكَ، رُفِعَتِ الأَقْلَامُ، وَجَفَّتِ الصُّحُفُ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

وَفِي رِوَايَةِ غَيْرِ التِّرْمِذِيِّ: (اِحْفَظِ اللَّهَ تَجِدْهُ أَمَامَكَ، تَعَرَّفْ إِلَى اللَّهِ فِي الرَّخَاءِ يَعْرِفْكَ فِي الشِّدَّةِ، وَاعْلَمْ أَنَّ ما أَخْطَأَكَ لَمْ يَكُنْ لِيُصِيبَكَ، وَمَا أَصابَكَ لَمْ يُكُنْ لِيُخْطِئَكَ، وَاعْلَمْ أَنَّ النَّصْرَ مَعَ الصَّبْرِ، وَأَنَّ الْفَرَجَ مَعَ الْكَرْبِ، وَأَنَّ مَعَ الْعُسْرِ يُسْراً)

62- Ji Îbnu 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Ez rojekê li pişt Pêxember (s.) bûm. Got: "Ya xulam! Ezê te hînî çend kelîman bikim; dînê Xwedê biparêze, Xweda jî dê te biparêze; dînê Xwedê biparêze tê wî digel xwe bibînî. Gava te xwest, bes ji Xwedê bixwaze; gava te arîkarî xwest arîkariyê her ji wî bixwaze. Bizanibe ku eger temamê ummetê li hevdu kom bibin, da ku qenciyekê bi te bikin, ji bilî tişta ku Xweda te'ala ji te re nivîsî nikarin qenciyekê bi te bikin. Û eger li hevdu kom bibin, da ku zerarekê bidin te, dîsa ji bilî tişta ku Xwedê te'ala ji bo te nivîsî nikarin zerarekê bidin te. Qelem (ji nivîsandinê) rabûne. Sehîfe jî zuwa bûne." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye: ev hedîs hesen e, sehîh e.*

Di rîwayeta xêncî Tirmizî de: Emrê Xwedê te'ala biparêze, tê wî li pêşiya xwe bibînî, di firehiyê de Xwedê te'ala binase, da ku ew jî di tengiyê de te binase. Bizanibe tişta ku dê rastî te nebe, jixwe rastî te nabe û tişta ku dê rastî te bibe, ne mumkine ku rastî te nebe. Bizanibe serkeftin bi sebrê re ye, rizgarî bi kederê re ye, ferehî bi tengasiyê re ye.

٦٣- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: إِنَّكُمْ لَتَعْمَلُونَ أَعْمَالاً هِيَ أَدَقُّ فِي أَعْيُنِكُمْ مِنَ الشَّعَرِ، كُنَّا نَعُدُّهَا عَلَى عَهْدِ النَّبِيِّ ﷺ مِنَ الْمُوبِقَاتِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

63- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Bêşik hûn hinek kar û 'emelan dikin ku li ber çavên we ji mû ziravtir e, lêbelê me ew karana di dewra Resûlê Xwedê (s.) de ji gunehên mezin dihesibandin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٦٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى يَغَارُ وَغَيْرَةُ اللَّهِ تَعَالَى أَنْ يَأْتِيَ الْمَرْءُ مَا حَرَّمَ اللَّهُ عَلَيْهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

64- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, ku Pêxember (s.) gotiye: "Xwedê te'ala tê xîretê, xîreta wî ew e ku însan tişta ku Xwedê te'ala li ser wî heram kiriye bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ ثَلاَثَةً مِنْ بَنِي إِسْرَائِيلَ: أَبْرَصَ، وَأَقْرَعَ، وَأَعْمَى، أَرَادَ اللَّهُ أَنْ يَبْتَلِيَهُمْ، فَبَعَثَ إِلَيْهِمْ مَلَكًا، فَأَتَى الأَبْرَصَ فَقَالَ: أَيُّ شَيْءٍ أَحَبُّ إِلَيْكَ؟ قَالَ: لَوْنٌ حَسَنٌ وَجِلْدٌ حَسَنٌ، وَيَذْهَبُ عَنِّي الَّذِي قَدْ قَذِرَنِي النَّاسُ، فَمَسَحَهُ فَذَهَبَ عَنْهُ قَذَرُهُ وَأُعْطِيَ لَوْنًا حَسَنًا، فَقَالَ: فَأَيُّ الْمَالِ أَحَبُّ إِلَيْكَ؟ قَالَ: الإِبِلُ، أَوْ قَالَ: الْبَقَرُ شَكَّ الرَّاوِي فَأُعْطِيَ نَاقَةً عُشَرَاءَ، فَقَالَ: بَارَكَ اللَّهُ لَكَ فِيهَا، فَأَتَى الأَقْرَعَ فَقَالَ: أَيُّ شَيْءٍ أَحَبُّ إِلَيْكَ؟ قَالَ: شَعَرٌ حَسَنٌ، وَيَذْهَبُ عَنِّي هَذَا الَّذِي قَذِرَنِي النَّاسُ، فَمَسَحَهُ فَذَهَبَ عَنْهُ، وَأُعْطِيَ شَعَراً حَسَنًا، قَالَ: فَأَيُّ الْمَالِ أَحَبُّ إِلَيْكَ، قَالَ: الْبَقَرُ، فَأُعْطِيَ بَقَرَةً حَامِلاً وَقَالَ: بَارَكَ اللَّهُ لَكَ فِيهَا، فَأَتَى الأَعْمَى فَقَالَ: أَيُّ شَيْءٍ أَحَبُّ إِلَيْكَ؟ قَالَ: أَنْ يَرُدَّ اللَّهُ بَصَرِي، فَأُبْصِرَ النَّاسَ، فَمَسَحَهُ فَرَدَّ اللَّهُ إِلَيْهِ بَصَرَهُ، قَالَ: فَأَيُّ الْمَالِ أَحَبُّ إِلَيْكَ؟ قَالَ: الْغَنَمُ، فَأُعْطِيَ شَاةً وَالِداً، فَأَنْتَجَ هَذَانِ وَوَلَّدَ هَذَا، فَكَانَ لِهَذَا وَادٍ مِنَ الإِبِلِ، وَلِهَذَا وَادٍ مِنَ الْبَقَرِ، وَلِهَذَا وَادٍ مِنَ الْغَنَمِ، ثُمَّ إِنَّهُ أَتَى الأَبْرَصَ فِي صُورَتِهِ وَهَيْئَتِهِ، فَقَالَ: رَجُلٌ مِسْكِينٌ قَدِ انْقَطَعَتْ بِيَ الْحِبَالُ فِي سَفَرِي فَلاَ بَلاَغَ لِيَ الْيَوْمَ إِلاَّ بِاللَّهِ ثُمَّ بِكَ، أَسْأَلُكَ بِالَّذِي أَعْطَاكَ اللَّوْنَ الْحَسَنَ وَالْجِلْدَ الْحَسَنَ وَالْمَالَ بَعِيرًا أَتَبَلَّغُ بِهِ فِي سَفَرِي، فَقَالَ: الْحُقُوقُ كَثِيرَةٌ، فَقَالَ: كَأَنِّي أَعْرِفُكَ، أَلَمْ تَكُنْ أَبْرَصَ يَقْذَرُكَ النَّاسُ، فَقِيرًا فَأَعْطَاكَ اللَّهُ؟ فَقَالَ: إِنَّمَا وَرِثْتُ هَذَا الْمَالَ كَابِراً عَنْ كَابِرٍ، فَقَالَ: إِنْ كُنْتَ كَاذِبًا فَصَيَّرَكَ اللَّهُ إِلَى مَا كُنْتَ، وَأَتَى الأَقْرَعَ فِي صُورَتِهِ وَهَيْئَتِهِ فَقَالَ لَهُ مِثْلَ مَا قَالَ لِهَذَا، فَرَدَّ عَلَيْهِ مِثْلَ مَا رَدَّ هَذَا، فَقَالَ: إِنْ كُنْتَ كَاذِبًا فَصَيَّرَكَ اللَّهُ إِلَى مَا كُنْتَ، وَأَتَى الأَعْمَى فِي صُورَتِهِ

  

وَهَيْئَتِهِ فَقَالَ: رَجُلٌ مِسْكِينٌ وَابْنُ سَبِيلٍ، إِنْقَطَعَتْ بِيَ الْحِبَالُ فِي سَفَرِي فَلَا بَلَاغَ لِيَ الْيَوْمَ إِلَّا بِاللَّهِ ثُمَّ بِكَ، أَسْأَلُكَ بِالَّذِي رَدَّ عَلَيْكَ بَصَرَكَ، شَاةً أَتَبَلَّغُ بِهَا فِي سَفَرِي، فَقَالَ: قَدْ كُنْتُ أَعْمَى فَرَدَّ اللَّهُ إِلَيَّ بَصَرِي، فَخُذْ مَا شِئْتَ وَدَعْ مَا شِئْتَ، فَوَاللَّهِ لَا أَجْهَدُكَ الْيَوْمَ بِشَيْءٍ أَخَذْتُهُ لِلَّهِ عَزَّ وَ جَلَّ فَقَالَ: أَمْسِكْ مَالَكَ، فَإِنَّمَا ابْتُلِيتُمْ، فَقَدْ رَضِيَ اللَّهُ عَنْكَ. وَسَخِطَ عَلَى صَاحِبَيْكَ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

65- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: "Xwedê te'ala sê mirovên ji Benî Îsraîliyan; gurî, keçel û kor, xwest ku wan îmtihan bike, vêca di şeklê mirovekî de melekek şand, hate cem mirovê gurî û jê re got:Tu ji çi hez dikî? Got: Tişta ku însan min pê kirêt dibînin bibe û rengek xweşik, laşek xweşik dixwazim. Milyaket destê xwe li ser cesedê wî ve bir û anî wekî berê lêhat. Milyaket: Tu ji kîjan malî hez dikî? Got: Ez ji devan hez dikim. Xwedê te'ala deveke avis dayê. Got: Ji bo te pîroz be.

Pişt re milyaket hate bal ewê keçel û got: Tu ji çi hez dikî? Got: Tişta ku însan min pê kirêt dibînin bibe û porek xweşik dixwazim. Milyaket bi destê xwe serê wî mesih kir, pak bû û Xwedê te'ala porek xweşik dayê. Got: Ji çi malî tu hez dikî? Got: Ji çêlekan hez dikim. Xwedê çêlekek avis dayê û got: Bo te mubarek be ev çêlek.

Pişt re milyaket hate cem ewê kor û got: Tu ji çi hez dikî? Got: Ji Xwedê çav dixwazim ku pê însanan bibînim. Wî melekî bi destê xwe çavên wî mesih kir. Xwedê çavên wî danê. Milyaket got: Tu ji çi malî hez dikî? Got: Ji pez hez dikim. Xwedê te'ala pezek avis dayê.

Vêca deva wî za û çêleka wî za û peza wî za, ji bo xwedanê devê newalek ji devan û ji bo xwedanê çêlekê newalek ji çêlekan û ji bo xwedanê pez newalek ji pezî çêbû.

Paşê jî ew milyaket di şeklê wî yê berê de hate cem wiyê gurî û jê re got: Ez mirovek feqîr im bê pere mame, nikarim sefera xwe bidomînim. Vêca çareseriya min maye Xwedê te'ala, paşê jî tu. Tu bi heqê wî zatê ku rengê xweşik û laşê xweşik û mal daye te tu devekî bide min, da ku ez pê bikaribim sefera xwe bidomînim. Mirovê gurî got: Huqûq gelek in, ezê bidim kê û nedim kê? Melekî: Her wekî ez te nas dikim ma tu ne berê gurî bûy? Însan ji te direviyan, qey tu ne feqîr bûy? Xwedê ev malê han da te? Got: Ev mal min bi mîrasê ji bav û kalan wergirtiye. Melekî: Eger tu derew dikî Xwedê te bigerîne wekî berê. Pişt re milyaket li ser şeklê

wî yê berê hate cem mirovê keçel û jê re got. Wekî ku ji hevalê wî re gotî. Wî jî redda wî kir, çawa hevalê wî redda wî kiribû. Milyaket got: Eger tu derewan dikî Xwedê te'ala te bigerîne wekî berê, ka tu çawa bûy. Pişt re milyaket li ser şeklê wî yê berê hate cem mirovê kor û got: Ez mirovek feqîr û miskînim, rêwî me bêçare mame li sefera xwe de, ji ber tunebûnê rêwîtiya xwe nikarim berdewam bikim. Çara min maye Xwedê te'ala, paşê jî tu. Ji te daxwaz dikim bi navê wî Xwedayê ku çavên te dîsa daye te û mal û serwet daye te. Tu bes pezekî bidî min ku ez pê bighêm meqsed/mala xwe. Mirovê kor got: Belê ez kor bûm Xwedê te'ala ez xwedançav kirim û feqîr bûm, Xwedê mal da min. Tu çi dixwazî ji bo xwe hilgire, çi dixwazî bihêle, sond dixwim bi Xwedê te'ala her tiştê te ji bo Xwedê te'ala wergirtî ez ji te re çi astengiyê dernaxim/tu serbest î. Milyaket got: Mal malê te ye. Xwedê te'ala we îmtihan kir, tu serkeftî bûy Xwedê te'ala ji te razî bû, lêbelê ji her du hevalên te razî nebû." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٦٦- عَنْ أَبِي يَعْلَى شَدَّادِ بْنِ أَوْسٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (اَلْكَيِّسُ مَنْ دَانَ نَفْسَهُ وَعَمِلَ لِمَا بَعْدَ الْمَوْتِ، وَالْعَاجِزُ مَنْ أَتْبَعَ نَفْسَهُ هَوَاهَا، وَتَمَنَّى عَلَى اللَّهِ الأَمَانِيَّ).

رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

66- Ji Ebû Ye'la Şeddad kurê Ews (r.) hatiye rîwayetkirin, Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê aqilmend ew e ku xwe muhasebe bike û ji bo piştî mirinê kar bike. Kesê bêeqil jî ew e ku li pey hewa nefsa xwe here û ji Xwedê tiştên nebûyî daxwaz bike." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye hesen e.*

٦٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مِنْ حُسْنِ إِسْلَامِ الْمَرْءِ تَرْكُهُ مَا لَا يَعْنِيهِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي وَغَيْره.

67- Ji Ebû Hureyre (r.), Resûlullah (s.) gotiye: "Tevlênebûna tiştê neberkeftî ji başiya misilmaniya mirov e." *Tirmizî û xeyrê wî rîwayet kirine.*

٦٨- عَنْ عُمَرَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قال: (لَا يُسْأَلُ الرَّجُلُ فِيمَ ضَرَبَ إِمْرَأَتَهُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَغَيْره.

68- Ji 'Umer (r.), Resûlullah (s.) gotiye: "Ji mirov nayê pirsîn ka çima li jina xwe xistiye." *Ebû Dawûd û xeyrê wî rîwayet kirine.*

## بَابٌ فِي التَّقْوَى

## TEQWA/PARÊZIYA JI GUNEHAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا اتَّقُوا اللَّهَ حَقَّ تُقَاتِهِ﴾

"Gelî ewên bawerî anîne! Bi rast û dirustî teqwaya Xwedê bikin." [1]

﴿فَاتَّقُوا اللَّهَ مَا اسْتَطَعْتُمْ﴾

"Heya hûn dikarin teqwaya Xwedê bikin; ji 'ezabê wî xwe biparêzin."[2]

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا اتَّقُوا اللَّهَ وَقُولُوا قَوْلاً سَدِيدًا﴾

"Gelî ewên bawerî anîne! Teqwaya Xwedê bikin û rastiyê bêjin."[3]

﴿وَمَنْ يَتَّقِ اللَّهَ يَجْعَلْ لَهُ مَخْرَجًا وَيَرْزُقْهُ مِنْ حَيْثُ لَا يَحْتَسِبُ﴾

"Kesê teqwaya Xwedê bike, wê Xwedê çareseriyekê jê re derxe û wê ji ciyekî ku haya wî jê nîne rizqê wî bide." [4]

﴿إِنْ تَتَّقُوا اللَّهَ يَجْعَلْ لَكُمْ فُرْقَانًا وَيُكَفِّرْ عَنْكُمْ سَيِّئَاتِكُمْ وَيَغْفِرْ لَكُمْ وَاللهُ ذُو الْفَضْلِ الْعَظِيمِ﴾

"Eger hûn teqwaya Xwedê bikin wê qabiliyetek wisa bide we ku hûn başî û nebaşiyê ji hev nas bikin û wê Xwedê gunehên we bibe û bibexşîne. Xwedê, xwedanê camêriya mezin e."[5]

٦٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قِيلَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ: مَنْ أَكْرَمُ النَّاسِ؟ قَالَ: (أَتْقَاهُمْ) فَقَالُوا: لَيْسَ عَنْ هَذَا نَسْأَلُكَ، قَالَ: (فَيُوسُفُ، نَبِيُّ اللَّهِ ابْنُ نَبِيِّ اللَّهِ، ابْنِ خَلِيلِ اللَّهِ) قَالُوا: لَيْسَ عَنْ هَذَا نَسْأَلُكَ، قَالَ: (فَعَنْ مَعَادِنِ الْعَرَبِ تَسْأَلُونِي؟ خِيَارُهُمْ فِي الْجَاهِلِيَّةِ خِيَارُهُمْ فِي الإِسْلَامِ إِذَا فَقُهُوا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

69-Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Ji Pêxember (s.) hate

1 Alî 'Îmran, 3/102.
2 Texabûn, 64/16.
3 Ehzab, 33/70.
4 Telaq, 65/2-3.
5 Enfal, 8/29.

pirs kirin: Ya Qasidê Xwedê! Baştirînê însanan kî ye? Got: Yê teqwatir e. Gotin: Em ne pirsa vê ji te dikin. Got: Yûsuf Pêxemberê Xwedê ye, kurê Pêxemberê Xwedê ye, kurê dostê Xwedê ye.

Gotin: Em ne pirsa vê ji te dikin. Got: "Naxwe hûn pirsiyara qebîlên 'Ereban ji min dikin? Başê wanê di dewra cahiliyetê de başê wanê di dewra Îslamiyetê de ye, eger ku zana be." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٧٠- عَنْ أَبِي سَعِيدِ الخُدْرِيِّ ﷺ عن النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ الدّنْيَا حُلْوَةٌ خَضرةٌ، وَإِنَّ الله مُسْتَخْلِفُكُمْ فِيهَا فَينظُرَ كَيْفَ تَعْمَلُونَ، فَاتَّقُوا الدَّنْيَا وَاتَّقُوا النِّسَاءَ، فإِنَّ أَوَّلَ فِتْنَةِ بنِي إِسْرَائِيلَ كَانَتْ فِي النِّساءِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

70- Ji Ebû Se'îd el-Xudrî (r.) rîwayet bûye, ku Pêxember (s.) gotiye: "Bêguman dunya şirîn û heşîn e/xwedancazibe ye. Bêguman Xweda te'ala we li dunyayê dihêle ka hûnê çawa 'emel bikin? Vêca xwe ji dunyayê biparêzin û ji jinan jî biparêzin. Çunkî destpêka fitna Benî Îsraîliyan ji rûyê jinan de bû." *Muslim rîwayet kiriye.*

٧١- عَنْ إِبْنِ مَسْعُودٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يَقُولُ: (اَللَّهُمَّ إِنِّي أَسْأَلُكَ الْهُدَى وَالتُّقَى وَالْعَفَافَ وَالْغِنَى). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

71- Ji Îbnu Mes'ûd (r.) hatiye rîwayetkirin, ku Pêxember (s.) wiha dua dikir: "Xwedayê min! Ez ji te daxwaza hîdayetê, teqwayê, 'îffetê –dûrbûna ji tiştê te heram kirî– û dewlemendiyê dikim." *Muslim rîwayet kiriye.*

٧٢- عَنْ أَبِي طَرِيفِ عِدِيِّ بْنِ حَاتِمِ الطَّائِيِّ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ حَلَفَ عَلَى يَمِينٍ، ثُمَّ رَأَى أَتْقَى لِلَهِ مِنْهَا، فَلْيَأْتِ التَّقْوَى). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

72-Ji Ebû Terîf 'Ediyy kurê Hatemet-Ta'î (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Min ji Qasidê Xwedê te'ala (s.) bihîstiye digot: "Kesê li ser tiştekî sond bixwe paşê jê qenctir dît bila wê bike." *Muslim rîwayet kiriye.*

٧٣- عَنْ أَبِي أُمَامَةَ صُدَيْ بْنِ عَجْلَانَ الْبَاهِلِيِّ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَخْطُبُ فِي حَجَّةِ الْوَدَاعِ فَقَالَ: (اِتَّقُوا اللَّهَ وَصَلُّوا خَمْسَكُمْ، وَصُومُوا شَهْرَكُمْ، وَأَدُّوا زَكَاةَ

  

أَمْوَالِكُمْ، وَأَطِيعُوا أُمَرَاءَكُمْ تَدْخُلُوا جَنَّةَ رَبِّكُمْ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي فِي آخِرِ كِتَابِ الصَّلَاةِ، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

73- Ji Ebû Umame Sudey kurê 'Eclan el-Bahilî (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: "Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, di xutba heca xatirxwestinê de digot: "Xwe ji 'ezabê Xwedê biparêzin, her pênc nimêjên xwe bikin, rojiya xwe bigrin, zikata malê xwe bidin, bi ya amirên xwe bikin. de hûn bikevin cenneta Rebbê xwe." *Tirmizî ev hedîs di paşiya "Kîtabû es-Selat" de rîwayetk kiriye û gotiye: Hesen e, sehîh e.*

## بَابُ الْيَقِينِ وَالتَّوَكُّل
## YEQÎN Û TEWEKKUL

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَلَمَّا رَأَى الْمُؤْمِنُونَ الأَحْزَابَ قَالُوا هَذَا مَا وَعَدَنَا اللَّهُ وَرَسُولُهُ وَصَدَقَ اللَّهُ وَرَسُولُهُ وَمَا زَادَهُمْ إِلَّا إِيمَاناً وَتَسْلِيماً﴾

"Zemanê mu'minan ehzab –neyarên ku ji bona herba digel misilmanan ji çend qebîlan kom bûyî– dîtin, gotin: Eva, ya ku Xwedê û Resûlê wî wa'd daye me. Xwedê û Resûlê wî rast gotine. Evê jî îmana misilmanan û teslîmbûna wan ji bo Rebbê wan zêde kir."[1]

﴿الَّذِينَ قَالَ لَهُمُ النَّاسُ إِنَّ النَّاسَ قَدْ جَمَعُوا لَكُمْ فَاخْشَوْهُمْ فَزَادَهُمْ إِيمَاناً وَقَالُوا حَسْبُنَا اللَّهُ وَنِعْمَ الْوَكِيلُ فَانقَلَبُوا بِنِعْمَةٍ مِنَ اللَّهِ وَفَضْلٍ لَمْ يَمْسَسْهُمْ سُوءٌ وَاتَّبَعُوا رِضْوَانَ اللَّهِ واللهُ ذُو فَضْلٍ عَظِيمٍ﴾

"Ewan muminên wisan, ku zemanê însanan ji wan re got: Însan li ser we kom bûne, vêca ji wan bitirsin û karê xwe bikin. Ewan gotinan îmana wan zêde kir û gotin: Xwedayê me besî me ye û xweş wekîl e. Ji ber vê yekê bi nîmetê Xwedê û bi fezla wî vegeriyan û "ji kuştin" û "birîndariyê" tiştek nehate serê wan, ketine li dûv razîbûna Xwedê û Xwedê xwedanê fezla mezin e."[2]

﴿وَتَوَكَّلْ عَلَى الْحَيِّ الَّذِى لَا يَمُوتُ﴾

"Xwe bispêre wî Xwedayê her yê sax e ku namire."[3]

1 Ehzab, 33/22.
2 Alî 'Îmran, 3/173-174.
3 Furqan, 52/58.

﴿وَعَلَى اللَّهِ فَلْيَتَوَكَّلِ الْمُؤْمِنُونَ﴾

"Bila mu'min hemû bestenê xwe bispêrin Xwedê."[1]

﴿فإِذَا عَزَمْتَ فَتَوَكَّلْ عَلَى اللَّهِ﴾

"Zemanê te 'ezim kir/biryar da, tewekkula xwe bide Xwedê."[2]

﴿وَمَنْ يَتَوَكَّلْ عَلَى اللَّهِ فَهُوَ حَسْبُهُ﴾

"Her kesê tewekkula xwe bide Xwedê, ew kafiyê wî ye/besî wî ye."[3]

﴿إِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ الَّذِينَ إِذَا ذُكِرَ اللَّهُ وَجِلَتْ قُلُوبُهمْ وَإِذَا تُلِيَتْ عَلَيْهِمْ آيَاتُهُ زَادَتْهمْ إِيماناً وَعَلَى رَبِّهِمْ يَتَوَكَّلونَ﴾

"Mu'minên kamil, ew kes in ku ewana zemanê behsa Xwedê hate kirin qelbê wan ditirse û wextê ayetên Qur'anê ji wan re hat xwendin ew ayet îmana/baweriya wan bi Xwedayê wan zêde dike û bes xwe dispêrin Rebbê xwe."[4]

٧٤- عَنْ إِبْنُ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ:(عُرِضَتْ عَلَيَّ ٱلأُمَمُ فَرَأَيْتُ النَّبِيَّ وَمَعَهُ الرُّهَيْطُ، وَالنَّبِيَّ وَمَعَهُ الرَّجُلُ وَالرَّجُلاَنِ، وَالنَّبِيَّ لَيْسَ مَعَهُ أَحَدٌ إِذْ رُفِعَ لِي سَوَادٌ عَظِيمٌ، فَظَنَنْتُ أَنَّهُمْ أُمَّتِي، فَقِيلَ لِي: هَذَا مُوسَى وَقَوْمُهُ، وَلَكِنِ انْظُرْ إِلَى ٱلأُفُقِ، فَنَظَرْتُ فَإِذَا سَوَادٌ عَظِيمٌ، فَقِيلَ لِي: أُنْظُرْ إِلَى ٱلأُفُقِ ٱلآخَرِ فَإِذَا سَوَادٌ عَظِيمٌ، فَقِيلَ لِي: هَذِهِ أُمَّتُكَ وَمَعَهُمْ سَبْعُونَ أَلْفًا يَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ بِغَيْرِ حِسَابٍ وَلَا عَذَابٍ) ثُمَّ نَهَضَ فَدَخَلَ مَنْزِلَهُ، فَخَاضَ النَّاسُ فِي أُولَئِكَ الَّذِينَ يَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ بِلَا حِسَابٍ وَلَا عَذَابٍ، فَقَالَ بَعْضُهُمْ: فَلَعَلَّهُم اَلَّذِينَ صَحِبُوا رَسُولَ اللَّهِ ﷺ وَقَالَ بَعْضُهُمْ فَلَعَلَّهُم الَّذِينَ وُلِدُوا فِي ٱلإِسْلَامِ وَلَمْ يُشْرِكُوا بِاللَّهِ وَذَكَرُوا أَشْيَاءَ، فَخَرَجَ عَلَيْهِمْ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: (مَا الَّذِي تَخُوضُونَ فِيهِ) فَأَخْبَرُوهُ، فَقَالَ: (هُمُ الَّذِينَ لَا يَرْقُونَ وَلَا يَسْتَرْقُونَ، وَلَا

1 Îbrahîm, 16/11.
2 Alî 'Îmran, 3/159.
3 Telaq, 65/3
4 Enfal, 8/2

يَتَطَيَّرُونَ وَعَلَى رَبِّهِمْ يَتَوَكَّلُونَ) فَقَامَ عُكَّاشَةُ بْنُ مِحْصَنٍ فَقَالَ: ادْعُ اللَّهَ أَنْ يَجْعَلَنِي مِنْهُمْ، فَقَالَ: (أَنْتَ مِنْهُمْ) ثُمَّ قَامَ رَجُلٌ آخَرُ فَقَالَ ادْعُ اللَّهَ أَنْ يَجْعَلَنِي مِنْهُمْ، فَقَالَ: (سَبَقَكَ بِهَا عُكَّاشَةُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

74- Ji kurê ‘Ebbas (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Ummetên borî ji min re hatin nîşandan –di hişyarbûnê de yan jî di şeva Mî‘racê de– min pêxemberek dît ku çend heb digel bûn. Pêxemberek dît ku mirovek yan du mirov digel wî bûn û min pêxemberek dît tu kes digel wî nebû, di vê esnayê de reşatiyek mezin kete beriya min, min zenkir ku ew ummeta min bû, ji min re hate gotin: Ev nebî Mûsa û digel ummeta xwe ye, bes tu li jorê binêre, min nêrî, min dît reşatiyek mezin kete beriya min, bo min hate gotin, ev ummeta te ye û digel wan heftê hezar kes hene bêhisab û bê‘ezab diçine cennetê. Paşê Pêxember (s.) rabû çû mala xwe, vêca der heqê wan kesên ku bêhisab û bê‘ezab diçine cennetê axaftin çêbû, hinekan gotin: Dibe ew kesan bin ku hevalî û hogîrî digel Pêxemberê Xwedê kirin û hinekan gotin: Belkî ew bin di dewra Îslamiyetê de hatin dunyayê û şirîk ji bo Xwedê çênekirin û hinekan jî te’wîlê dîtir gotin. Di vê esnayê de Resûlê Xwedê ji mala xwe derket hate cem wan û agahdar bû ku misilman derheqê wan heftê hezar însanan de goft û goyan dikin. Ew çi ye hûn derheqê wî de diaxivin? Pêxemberê Xwedê got: Ewan ew kesên ku (niviştan) çênakin û nadin çêkirin jî û ji bêoxiriyê jî[1] xeber nadin û xwe dispêrin Xwedayê xwe. ‘Ukaşe kurê Mihsen rabû şipê got: Ya Resûlê Xwedê! Dua bike ku Xwedê te‘ala min ji wan bigerîne. Got: Tu hatî gerandin ji wan, paşê mirovek dî rabû serxwe û got, dua bike ku Xwedê min jî ji wan bihesibîne, Pêxemberê Xwedê (s.) got: ‘Ukaşe tu paş hiştî.” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٧٥- عَنْ إِبْنِ عَبَّاسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَقُولُ: (اَللَّهُمَّ لَكَ أَسْلَمْتُ، وَبِكَ آمَنْتُ، وَعَلَيْكَ تَوَكَّلْتُ، وَإِلَيْكَ أَنَبْتُ، وَبِكَ خَاصَمْتُ، اَللَّهُمَّ أَعُوذُ بِعِزَّتِكَ، لَا إِلَهَ إِلَّا أَنْتَ أَنْ تُضِلَّنِي، أَنْتَ الْحَيُّ الَّذِي لَا يَمُوتُ وَالْجِنُّ وَالإِنْسُ يَمُوتُونَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

75- Ji Îbnu ‘Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin, Resûlê Xwedê (s.) gotiye: “Xwedayê min! Ez teslîmî te bûme, min her bi te bawerî aniye. Min her xwe spartiye te, min her berê xwe daye bal te ve, her bi te min mucadele

1 Ji yek xurafat û adetê cahiliyetê ye, yek bibêje ezê teyrê xwe bifirînim ger bi aliyê rastê ve fir da ev îşê min, ev sefera min bixêr e; ger li aliyê çepê ve firiya sefera min bêoxir e. Ev ne Îslamiyet e.

digel reqib xwe kiriye, ji bo ku tu min ji rê şaş nekî ez bi 'îzzeta te xwe digrim. Ji xeyrê te me'bûdê bilheq tune ne, tu her saxî, tu namirî, însan û cin dê bimirin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٦- عَنْ إِبْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: (حَسْبُنَا اللَّهُ وَنِعْمَ الْوَكِيلُ) قَالَهَا إِبْرَاهِيمُ ﷺ حِينَ أُلْقِيَ فِي النَّارِ، وَقَالَهَا مُحَمَّدٌ ﷺ حِينَ قَالُوا: (إِنَّ النَّاسَ قَدْ جَمَعُوا لَكُمْ فَاخْشَوْهُمْ فَزَادَهُمْ إِيمَاناً وَقَالُوا حَسْبُنَا اللَّهُ وَنِعْمَ الْوَكِيلُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: (كَانَ آخِرَ قَوْلِ إِبْرَاهِيمَ ﷺ حِينَ أُلْقِيَ فِي النَّارِ: حَسْبِيَ اللَّهُ وَنِعْمَ الْوَكِيلُ).

76- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: *Hesbunellah we nî'mel wekîl*. Yanî Xweda besî me ye û xweş-wekîl e. Ev hevoka han Îbrahîm Pêxember (e.) gotiye dema li ser de, wa heq hate avêtin nav agirî de. Muhemmed (s.) jî gotiye, wextê gotin: Nas/ehzab li ser we kom bûne, vêca hûn ji wan bitirsin, vê gotinê îman û baweriya misilmanan zêde kir û misilmanan gotin: Xwedê besê me ye û xweş wekîl e." *Buxarî rîwayet kiriye.*

Di rîwayetek dîtir de kurê 'Ebbas (r.), gotiye: "Dawiya gotina Îbrahîm (e.), zemanê ku hate avêtin nav êgir de eva bû: *Hesbûnellahu we nî'mel-wekîl*. Yanî Xweda besî me ye û xweş wekîle."

٧٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (يَدْخُلُ الْجَنَّةَ أَقْوَامٌ أَفْئِدَتُهُمْ مِثْلُ أَفْئِدَةِ الطَّيْرِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

77- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin Pêxember (s.) gotiye: "Qewmek dê biçine cennetê/biheştê, dilên wan wekî dilên teyran e." *Muslim rîwayet kiriye.*

٧٨- عَنْ جَابِرٍ ﷺ أَنَّهُ غَزَا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قِبَلَ نَجْدٍ، فَلَمَّا قَفَلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ قَفَلَ مَعَهُمْ، فَأَدْرَكَتْهُمُ الْقَائِلَةُ فِي وَادٍ كَثِيرِ الْعِضَاهِ، فَنَزَلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَتَفَرَّقَ النَّاسُ يَسْتَظِلُّونَ بِالشَّجَرِ، وَنَزَلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ تَحْتَ سَمُرَةٍ فَعَلَّقَ بِهَا سَيْفَهُ، وَنِمْنَا نَوْمَةً ثُمَّ فَإِذَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَدْعُونَا، وَإِذَا عِنْدَهُ أَعْرَابِيٌّ، فَقَالَ: (إِنَّ هَذَا اخْتَرَطَ عَلَيَّ سَيْفِي

وَأَنَا نَائِمٌ، فَاسْتَيْقَظْتُ وَهُوَ فِي يَدِهِ صَلْتًا، قَالَ: مَنْ يَمْنَعُكَ مِنِّي؟ قُلْتُ: اللّهُ) وَلَمْ يُعَاقِبْهُ وَجَلَسَ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ قَالَ جَابِرٌ: كُنَّا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ بِذَاتِ الرِّقَاعِ، فَإِذَا أَتَيْنَا عَلَى شَجَرَةٍ ظَلِيلَةٍ تَرَكْنَاهَا لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَجَاءَ رَجُلٌ مِنَ الْمُشْرِكِينَ وَسَيْفُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ مُعَلَّقٌ بِالشَّجَرَةِ، فَاخْتَرَطَهُ، فَقَالَ: تَخَافُنِي؟قَالَ: (لَا) فَقَالَ: فَمَنْ يَمْنَعُكَ مِنِّي؟ قَالَ:(اَللّهُ).

وَفِي رِوَايَةِ أَبِي بَكْرٍ الْإِسْمَاعِيلِي فِي صَحِيحِهِ قال: مَنْ يَمْنَعُكَ مِنِّي؟ قَالَ: (اللّهُ) فَسَقَطَ السَّيْفُ مِنْ يَدِهِ، فَأَخَذَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ اَلسَّيْفَ، فَقَالَ: (مَنْ يَمْنَعُكَ مِنِّي؟) قَالَ: كُنْ خَيْرَ آخِذٍ، فَقَالَ: (تَشْهَدُ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ وَأَنِّي رَسُول اللَّهِ) قَالَ: لَا، وَلَكِنِّي أُعَاهِدُكَ أَلاَّ أُقَاتِلَكَ، وَلَا أَكُونَ مَعَ قَوْمٍ يُقَاتِلُونَكَ، فَخَلَّى سَبِيلَهُ، فَأَتَى أَصْحَابَهُ فَقَالَ: جِئْتُكُمْ مِنْ عِنْدِ خَيْرِ النَّاسِ.

78- Ji Cabir (r.), ew digel Resûlullah (s.) çûbû herbê bi aliyê Necdê ve. Zemanê Resûlê Xwedê ji herbê vegeriya, ew jî –Cabir– digel wî vegeriya, di germiyek sincirî de hatin newalek têrdar. Pêxemberê Xwedê (s.) peya bû, însan jî belav bûn li bin siha daran. Resûlê Xwedê hate bin siha darek kenêrê û şûrê xwe pê da daliqand û em di xew da çûn; nagihan me dît ku Pêxemberê Xwedê (s.) gazî me dike û kesek bedewî jî li cem wî rawestiye û got: Vî bedewî şûrê min tazî kir, li ser min rawesta û ez di xewê de bûm, ez hişyar bûm min dît ku va ye şûrê min di destê wî de ye. Got ya Muhemmed ka îro kiyê te ji min biparêze? Min got got: Xweda ye. Resûlê Xwedê (s.) ew bedewiya ceza nekir, û rûnişt.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetek dî de Cabir gotiye: Em di herba (Zatir-Riqa‘ê) digel Resûlê Xwedê bûn. Zemanê ku em rastî dareke xwedan-sîber hatin, me ew hişt ji bo îstiraheta wî. Mirovek ji muşrikan hat û şûrê Resûlê Ekrem (s.) ê bi darê ve daliqandî bi lez ji kalan kişand û got: Tu ji min ditirsî? Pêxember got: Na. Got: Yê te ji min biparêze kî ye? Got: Xweda ye.

Di rîwayeta Ebû Bekirê Îsmaîlî, di sehîha wî de: Bedewî got: Yê te ji min xelas bike kî ye? Resûlê Xwedê got: Xweda ye. Vêca şûrê destê bedewî kete erdê, Pêxember (s.) ew şûr wergirt û got: Vêca yê te ji min xelas bike kî

ye? Bedewî got: Tu ji yê şûr hilgirtî baştir be. Efûkirin şe'nê te ye. Resûlê Xwedê gote wî: Tuyê îmanê bînî? Got: Na. Welakîn ez sozê didim te ku tu cara digel te şerr nekim û ezê digel wî qewmê ku bi te re şer bike, nebim. Resûlê Xwedê ew bedewî serbest berda; ew bedewî hate cem hevalên xwe û got: Ez ji bal baştirînê însanan hatime cem we.

٧٩- عَنْ عُمَرَ ﷺ قَالَ سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (لَوْ أَنَّكُمْ تَتَوَكَّلُونَ عَلَى اللَّهِ حَقَّ تَوَكُّلِهِ لَرَزَقَكُمْ كَمَا يَرْزُقُ الطَّيْرُ، تَغْدُو خِمَاصًا وَتَرُوحُ بِطَاناً) رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

79- Ji 'Umer kurê Xettab (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Min ji Pêxember (s.) bihîstiye digot: "Eger we bi rastî tewekula xwe bida Xwedê, wê rizqê we bida, wekî rizqê teyran dide. Sibê birçî ji hêlîna xwe dertên diçin digerin, di êvarê de bi têrî vedigerin." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye: Hesen e.*

٨٠- عَنْ أَبِي عُمَارَةَ الْبَرَاءِ بْنِ عَازِبٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (يَا فُلَانُ، إِذَا أَوَيْتَ إِلَى فِرَاشِكَ فَقُلْ: اَللَّهُمَّ أَسْلَمْتُ نَفْسِي إِلَيْكَ، وَوَجَّهْتُ وَجْهِي إِلَيْكَ، وَفَوَّضْتُ أَمْرِي إِلَيْكَ، وَأَلْجَأْتُ ظَهْرِي إِلَيْكَ، رَغْبَةً وَرَهْبَةً إِلَيْكَ، لَا مَلْجَأَ وَلَا مَنْجَا مِنْكَ إِلَّا إِلَيْكَ، آمَنْتُ بِكِتَابِكَ الَّذِي أَنْزَلْتَ، وَنَبِيِّكَ الَّذِي أَرْسَلْتَ، فَإِنَّكَ إِنْ مِتَّ مِنْ لَيْلَتِكَ مِتَّ عَلَى الْفِطْرَةِ، وَإِنْ أَصْبَحْتَ أَصَبْتَ خَيْراً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ فِي الصَّحِيحَيْن، قَالَ النَّبِيّ ﷺ: (إِذَا أَتَيْتَ مَضْجَعَكَ فَتَوَضَّأْ وَضُوءَكَ لِلصَّلَاةِ، ثُمَّ اضْطَجِعْ عَلَى شِقِّكَ الأَيْمَنِ وَقُلِ) وَذَكَرَ نَحْوَهُ ثُمَّ قَالَ: (وَاجْعَلْهُنَّ آخِرَ مَا تَقُولُ)

80- Ji Ebû 'Umare el-Bera kurê 'Azib (r.) hatiye rîwayetkirin, Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ya filan! Zemanê tu çûyî ku nav cihê xwe da ku razî bêje: Xwedayê min! Min nefsa xwe teslîmî te kiriye, min berê xwe daye te, min îşê xwe spartiye te, min pişta xwe spartiye te, ji tirs û hêvîdariya ji te, cihê ku ez xwe pê bigrim û ciyê ez xwe biparêzim tune ji bilî te. Ew kitêba ku te nazil kiriye, min bawerî pê aniye û min bawerî bi wî Pêxemberê te şandiye jî aniye. Vêca eger tu wê şevê de bimirî tuyê li ser misilmaniyê bimirî û eger tu sax mayî jî tu wê lîqayê xêrê bibî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

  

Di rîwayetek din, di sahîha Buxarî û Muslim de Resûlê Ekrem (s.) wiha gotiye: "Zemanê te xwest herî cihê xwe rakevî, destnimêj bigre wekî destnimêjgirtina nimêjê, paşê li ser kêleka xwe ya rastê rakeve û wê duaya borî bixwîne. Wan duana têxe dûmahiya gotinên xwe yên wê şevê."

٨١- عَنْ أَبِي بَكْرٍ الصِّدِّيقِ ﷺ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُثْمَانَ وَهُوَ وَأَبُوهُ وَأُمُّهُ صَحَابَةٌ ﷺ قَالَ: نَظَرْتُ إِلَى أَقْدَامِ الْمُشْرِكِينَ وَ نَحْنُ فِي الْغَارِ وَهُمْ عَلَى رُؤُوسِنَا فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، لَوْ أَنَّ أَحَدَهُمْ نَظَرَ تَحْتَ قَدَمَيْهِ لأَبْصَرَنَا، فَقَالَ: (مَا ظَنُّكَ يَا أَبَا بَكْرٍ بِاثْنَيْنِ اَللهُ ثَالِثُهُمَا)

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

81- Ji Ebû Bekir Siddîq 'Ebdûllah kurê Osman –ew, bav, kalik û dayka xwe sahabî ne– (r.): Dema em di şikefta Sewrê de bûn, min nihêrî ku muşrik li ser serê me diçin û tên, min got: Ya Resûlê Xwedê (s.)! Eger yek ji wan muşrikan li bin lingên xwe binêre dê me bibîne. Resûlê Ekrem got: Ya Ebû Bekir! Tu çi zen dikî bi du mirovan ku sisî yên wan Xwedê be? *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٢- عَنْ أُمِّ الْمُؤْمِنِينَ أُمِّ سَلَمَةَ، وَإِسْمُهاَ هِنْدُ بِنْتُ أَبِي أُمَيَّةَ حُذَيْفَةَ الْمَخزومِيَّةُ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ إِذَا خَرَجَ مِنْ بَيْتِهِ قَالَ: (بِسْمِ اللَّهِ، تَوَكَّلْتُ عَلَى اللَّهِ، اللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ أَنْ أُضِلَّ أَوْ أُضَلَّ، أَوْ أَزِلَّ أَوْ أُزَلَّ، أَوْ أَظْلِمَ أَوْ أُظْلَمَ، أَوْ أَجْهَلَ أَوْ يُجْهَلَ عَلَيَّ).

رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي وَغَيْرهُمَا بِأَسَانِيد صَحِيحَة.

82- Ji Ummu Seleme(r.) hatiye rîwayetkirin, bêşik Resûlê Ekrem (s.) zemanê ku ji mala xwe derketa wiha digot: Her bi navê Xwedê min xwe sparte te ya Xweda! Ez xwe dispêrim 'îzzeta te; quweta te ku ez ji rêya dirust winda bibim yan jî bême windakirin yan ez ji îstiqametê bikevim yan jî bêm êxistin yan ez zilm û zordariyê bikim yan jî zilm li min bê te kirin yan ez heqiyê nezanim yan jî heqî li ser min bê te nezanîn –berê min bê dayin bi bal tiştekî ve ji exlaqê min nebe–." *Ebû Dawûd û Tirmizî û ji xeyrê wan jî rîwayet kirine bi senedên sehîh.*

عَلَى اللَّهِ، وَلَا حَوْلَ وَلَا قُوَّةَ إِلَّا بِاللَّهِ، يُقَالُ لَهُ: هُدِيتَ وَكُفِيتَ وَوُقِيتَ وَتَنَحَّى عَنْهُ الشَّيَاطِينُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرمِذِي وَالنَّسَائِي.

زَادَ أَبُو دَاوُودَ فَيَقُولُ: يَعْنِي الشَّيْطَانَ، لِشَيْطَانٍ آخَرَ كَيْفَ لَكَ بِرَجُلٍ قَدْ هُدِيَ وَكُفِيَ وَوُقِيَ؟

83- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin, Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Her kesê (ku ji mala xwe derkeve) bibêje: Bi navê Xwedê min tewekula xwe da, Xwedê, vegerandina ji gunehan û quweta li ser ta'etî tune illa bi Xwedê. Jê re tê gotin: Tu hatî hîdayet kirin, hacetên te bi temamî hatin cih û tu hatî parastin û şeytan ji wî dûr dikeve. *Ebû Dawûd û Tirmizî û Nesaî rîwayet kirine.*

Ebû Dawûd weha zêde kiriye, dibêje: (Yanî şeytanek ji bo şeytanekî dî) tuyê çawa bikarî mirovekî ji rê derxî ku hîdayet bûye, her îşê wî temam bûye û hatiye muhafeze kirin?

٨٤- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: كَانَ أَخَوَانِ عَلَى عَهْدِ النَّبِيِّ ﷺ وَكَانَ أَحَدُهُمَا يَأْتِي النَّبِيَّ ﷺ وَالْآخَرُ يَحْتَرِفُ، فَشَكَا الْمُحْتَرِفُ أَخَاهُ لِلنَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ: (لَعَلَّكَ تُرْزَقُ بِهِ). رَوَاهُ التِّرمِذِي بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ عَلَى شَرطِ مُسْلِمٍ.

84- Ji Enes (r.), gotiye: Zemanê Pêxemberê Xwedê de (s.), du birayê hev hebûn ji wan yek li cem Resûlê Xwedê bû yek jî xebatkar bû, yê xebatkar giliyê birayê xwe li cem Pêxemberê Xwedê (s.) kir, Pêxemberê Xwedê (s.) got: Tu çi zanî belkî ji rûyî wî de Xwedê rizqê te dide. *Tirmizî li ser şertê Muslim bi isnadeke sehîh rîwayet kiriye.*

## بَابُ الإِسْتِقَامَةِ
## ÎSTIQAMET/DURISTÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿فَاسْتَقِمْ كَمَا أُمِرْتَ﴾

"Wekî emrê tî hatî kirin, rast be."[1]

﴿إِنَّ الَّذِينَ قَالُوا رَبُّنَا اللَّهُ ثُمَّ اسْتَقَامُوا تَتَنَزَّلُ عَلَيْهِمُ الْمَلَٰٓئِكَةُ أَلَّا تَخَافُوا وَلَا تَحْزَنُوا

1 Hûd, 11/112.

وَأَبْشِرُوا بِالْجَنَّةِ الَّتِي كُنْتُمْ تُوعَدُونَ نَحْنُ أَوْلِيَآؤُكُمْ فِي الْحَيَاةِ الدُّنْيَا وَفِي الْآخِرَةِ وَلَكُمْ فِيهَا مَاتَشْتَهِي أَنْفُسُكُمْ وَلَكُمْ فِيهَا مَاتَدَّعُونَ نُزُلاً مِنْ غَفُورٍ رَحِيمٍ﴾

"Ew kesên gotine: Rebbê me Xwedê ye, paşê jî li ser îstiqametê man (li cem mirinê) milyaket têne cem wan û ji wan re dibêjin: Netirsin û meraq nekin, xwedanmizgîn bin bi wê cenneta Xwedê te'ala ku soz daye we. Em di heyata dunyayê de û heyata axîretê de jî dostên we ne. Di wê cennetê de ji bo we tişta nefsa we biçiyê û hûn daxwaz bikin heye, ev jî ji aliyê Xwedayê bexişkar û dilovan ve mal haziriyek e."[1]

﴿إِنَّ الَّذِينَ قَالُوا رَبُّنَا اللَّهُ ثُمَّ اسْتَقَامُوا فَلَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ أُولَئِكَ أَصْحَابُ الْجَنَّةِ خَالِدِينَ فِيهَا جَزَآءً بِمَا كَانُوا يَعْمَلُونَ﴾

"Ew kesên gotine: Rebbê me Xwedê ye, paşê jî li ser îstiqametê man, li ser wan tirs çunîne û kederê nakêşin û ewan behiştî ne û ewan ji ber mukafata, 'emelê wan dê ebedî di cennetê de bin."[2]

٨٥- عَنْ أَبِي عَمْرٍو، وَقِيلَ: أَبِي عَمْرَةَ سُفْيَانَ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، قُلْ لِي فِي الإِسْلَامِ قَوْلاً لَا أَسْأَلُ عَنْهُ أَحَداً غَيْرَكَ، قَالَ: (قُلْ آمَنْتُ بِاللَّهِ ثُمَّ اسْتَقِمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

85- Ji Ebû 'Emr yan Ebû Emre Sufyan kurê 'Ebdullah (r.) got: Min got ya Resûlê Xwedê ji bo min derheqê Îslamiyetê de gotinekê bibêje da ku ji xeyrê te ji çi tu kesî pirsiyarê nekim. Got: "Bibêje min bawerî bi Xwedê, anî paşê jî rast û dirust be." *Muslim rîwayet kiriye.*

٨٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (قَارِبُوا وَسَدِّدُوا وَاعْلَمُوا أَنَّهُ لَنْ يَنْجُوَ أَحَدٌ مِنْكُمْ بِعَمَلِهِ) قَالُوا: وَلَا أَنْتَ يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: (وَلَا أَنَا إِلَّا أَنْ يَتَغَمَّدَنِيَ اللَّهُ بِرَحْمَةٍ مِنْهُ وَفَضْلٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

86- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Di kar û 'emelê, xwe de îqtisadê bikin (ne gelek, ne kêm) û bizanibin çi kes ji we bi 'emelê

1 Fussîlet, 41/30-32.
2 Ehqaf, 46/13-14.

xwe xelas nabe. Gotin: Tu jî bi ‘emelê xwe xelas nabî ya Resûlê Xwedê? Got: Belê, ez jî bi ‘emelê xwe xelas nabim, illa eger Xwedê te‘ala min bi fedl û rehmeta xwe bisitirîne.” *Muslim riwayet kiriye.*

## بَابُ التَّفْكِير
## TEFEKUR Û HIZIRKIRIN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿قُلْ إِنَّمَآ أَعِظُكُمْ بِوَاحِدَةٍ أَنْ تَقُومُوا لِلَّهِ مَثْنَى وَفُرَادَى ثُمَّ تَتَفَكَّرُوا﴾

“Ya Muhemmed! Bibêje: Bes ji we re yek we‘z û nesîhetê didim ku hûn ji bo pêkanîna emr û nehyên Xwedê dido dido û yek yek rabin, paşê jî hûn tefekurê bikin.”[1]

﴿إِنَّ فِي خَلْقِ السَّمَوَاتِ وَالأَرْضِ وَاخْتِلَافِ اللَّيْلِ وَالنَّهَارِ لآيَاتٍ لِأُولِي الأَلْبَابِ الَّذِينَ يَذْكُرُونَ اللَّهَ قِيَاماً وَقُعُوداً وَعَلَى جُنُوبِهِمْ وَيَتَفَكَّرُونَ فِي خَلْقِ السَّمَوَاتِ وَالأَرْضِ رَبَّنَا مَا خَلَقْتَ هَذَا بَاطِلاً سُبْحَانَكَ فَقِنَا عَذَابَ النَّارِ﴾

“Bi rastî di çêkirina erd û asîmanan de, hatin û çûyina şev û rojan de ayet û nîşan hene ji bo kesê jîr û aqildar. (Kesê jîr û aqildar) ewê rawestiyayî (li ser piya), rûniştî û li ser teniştê (kêlekê) dirêjkirî Xwedê tînine bîra xwe û zikrê wî dikin. Hizra xwe di çêkirina erd û asîmanan de dikin, (û dibêjin:) Xweda! (Ev cîhan) te pûç û vala çênekiriye. Pakî û bêqusûrî, her ji bo te ye. Êdî tu me ji êzabê êgir biparêze.”[2]

﴿أَفَلَا يَنْظُرُونَ إِلَى الإِبِلِ كَيْفَ خُلِقَتْ وَإِلَى السَّمَاءِ كَيْفَ رُفِعَتْ وَإِلَى الْجِبَالِ كَيْفَ نُصِبَتْ وَإِلَى الأَرْضِ كَيْفَ سُطِحَتْ فَذَكِّرْ إِنَّمَا أَنْتَ مُذَكِّرٌ﴾

“Ma çima li devehê nanêrin: Çawa hatiye xuliqandin? Û ma çima li asîmanan nanêrin: Çawa hatiye bilindkirin? Û ma çima li çiyan nanêrin? Çawa hatne çikandin? Û ma çima li erdê nanêrin çawa hatiye rastkirin? Tu bîne bîra wan, çunkî bes kar û emelê te teblîx û bîranîn e.”[3]

1 Sebe, 34/46.
2 Alî ‘Îmran, 3/190-191.
3 Xaşiye, 88/17-21.

﴿أَفَلَمْ يَسِيرُوا فِي الأَرْضِ فَيَنْظُرُوا كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْ﴾

"Ma li ser rûyê erdê negeriyane ku binêrin aqûbeta wan kesên beriya wan çawa bû?" Muhemmed, 47/10.

والآيَات فِي هَذَا الْبَاب كَثِيرَة وَمِن الأَحَادِيث الْحَدِيث السَّابِق (الْكَيِّس مَنْ دَانَ نَفْسُهُ)

Di derbarê vî babî de ayet gelek in.

Ji hedîsan jî ew hedîsa derbasbûyî: "Aqilmend ew kes e ku nefsa xwe re hesabê bibîne."

## لَى الْخَيْرَاتِ إ بَابُ الْمُبَادَرَةُ

## LEZKIRINA DI KARÊN QENC DE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿فَاسْتَبِقُوا الْخَيْرَاتِ﴾

"Di qenciyan de pêşbaziyê bikin."[1]

﴿وَسَارِعُوا إِلَى مَغْفِرَةٍ مِنْ رَبِّكُمْ وَجَنَّةٍ عَرْضُهَا السَّمَوَاتُ وَالأَرْضُ أُعِدَّتْ لِلْمُتَّقِينَ﴾

"Hûn bi kirina kar û emelê baş lezê bikin bi bal xefirandina Rebbê xwe û bi bal cennetekê ve ku beraya wê wekî beraya erd û asîmanan e û ji bona mutteqiyan hatiye amadekirin."[2]

٨٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (بَادِرُوا بِالأَعْمَالِ الصَّالِحَةِ، فَسَتَكُونُ فِتَنٌ كَقِطَعِ اللَّيْلِ الْمُظْلِمِ، يُصْبِحُ الرَّجُلُ مُؤْمِناً وَ يُمْسِي كَافِراً، وَ يُمْسِي مُؤْمِناً وَيُصْبِحُ كَافِراً، يَبِيعُ دِينَهُ بِعَرَضٍ مِنَ الدُّنْيَا). رَوَاهُ مُسْلِم.

87- Ji Ebû Hureyre (r.), bêşik Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Lezê bikin li bal kar û 'emelên baş. Çunkî hê wekî sa'etên şevên tarî bela û fitnên wisa çêdibin ku mirov, wextê sibêhê de mu'min e êvarê de dibe kafir û wextê êvarê de mu'min e sibehê de dibe kafir. Dînê xwe difroşe bi tiştkokekî ji dunyayê. *Muslim riwayet kiriye.*

٨٨- عَنْ أَبِي سِرْوَعَةَ عُقْبَةَ بْنِ الْحَارِثِ ﷺ قَالَ: صَلَّيْتُ وَرَاءَ النَّبِيِّ ﷺ بِالْمَدِينَةِ الْعَصْرَ

1 Beqere, 2/148.
2 Alî 'Îmran, 3/133.

فَسَلَّمَ، ثُمَّ قَامَ مُسْرِعًا فَتَخَطَّى رِقَابَ النَّاسِ إِلَى بَعْضِ حُجَرِ نِسَائِهِ، فَفَزِعَ النَّاسُ مِنْ سُرْعَتِهِ، فَخَرَجَ عَلَيْهِمْ فَرَأَى أَنَّهُمْ قَدْ عَجِبُوا مِنْ سُرْعَتِهِ، فَقَالَ: (ذَكَرْتُ شَيْئًا مِنْ تِبْرٍ عِنْدَنَا فَكَرِهْتُ أَنْ يَحْبِسَنِي فَأَمَرْتُ بِقِسْمَتِهِ). رَوَاهُ البُخَارِي.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: (كُنْتُ خَلَّفْتُ فِي الْبَيْتِ تِبْراً مِنَ الصَّدَقَةِ فَكَرِهْتُ أَنْ أُبَيِّتَهُ).

88- Ji Ebû Serwe'ete 'Uqbe kurê Haris (r.), gotiye: Min li Medînê nimêja 'esrê/berêvarê digel Resûlê Xwedê (s.) eda kir, piştî selamdayinê bi lez rabû û ji nav wan çû alî mala hinek ji ezwacên xwe, vêca însan ji ber lezbûna wî şaş man. Pêxember hat û dît ku ji ber lezkirina wî însan şaş mane, got: Di nimêjê de kete bîra min ku hinek zêr û zîv li cem me mane. Vêca min nexwest ew di nimêjê de bibe maniyê teweccuha min. Ez çûm min emir da bi belavkirina wan. *Buxarî rîwayet kiriye.*

Di rîwayetek dî ya Buxarî de: "Min li malê hinek ji zêr û zîvê ji malê sedeqê hiştibû, vêca min nexwest ku ew bi şev li cem min bimîne."

٨٩- عَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَجُلٌ لِلنَّبِيِّ ﷺ يَوْمَ أُحُدٍ: أَرَأَيْتَ إِنْ قُتِلْتُ فَأَيْنَ أَنَا؟ قَالَ: (فِي الْجَنَّةِ) فَأَلْقَى تَمَرَاتٍ كُنَّ فِي يَدِهِ ثُمَّ قَاتَلَ حَتَّى قُتِلَ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

89- Ji Cabir (r.), got: Di roja Uhudê de mirovekî gote Pêxemberê Xwedê (s.): Ya Resûlê Xweda! Eger îro ez bême kuştin ez dê li kuderê bim? Got: Tu yê li cennetê de bî. Vêca hinek xurme di destê wî de bûn. Ewî mirovî ew avêtin û şer kir heta hate kuştin. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، أَيُّ الصَّدَقَةِ أَعْظَمُ أَجْراً؟ قَالَ: (أَنْ تَصَدَّقَ وَأَنْتَ صَحِيحٌ شَحِيحٌ تَخْشَى الْفَقْرَ، وَتَأْمُلُ الْغِنَى، وَلَا تُمْهِلُ حَتَّى إِذَا بَلَغَتِ الْحُلْقُومَ قُلْتَ: لِفُلَانٍ كَذَا وَلِفُلَانٍ كَذَا، وَقَدْ كَانَ لِفُلَانٍ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

90- Ji Ebû Hureyre (r.) got: Mirovek hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) got: Ya Resûlê Xwedê! Çi qismê sedeqê xêra wê mezintir e? Got: Ew e ku tu sedeqê bidî ku tu li ser quweta xwe bî û bi hirs bî, ji feqîriyê bitirsî û

hêvîdariya dewlemendiyê bikî. Tu nehêle heta ruhê te bikeve gewriya te, vêca tu bêjî ji fulan kesî re ewqas par bila bê dayin, ji fulan kesî re jî ewqas, ewqas perê min li ser filan kesî bûn, ez li wî borîm. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩١- عَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ أَخَذَ سَيْفًا يَوْمَ أُحُدٍ فَقَالَ: (مَنْ يَأْخُذُ مِنِّي هَذَا) فَبَسَطُوا أَيْدِيَهُمْ كُلُّ إِنْسَانٍ مِنْهُمْ يَقُولُ: أَنَا أَنَا قَالَ: (فَمَنْ يَأْخُذُهُ بِحَقِّهِ) فَأَحْجَمَ الْقَوْمُ، فَقَالَ أَبُو دُجَانَةَ ﷺ: أَنَا آخُذُهُ بِحَقِّهِ، فَأَخَذَهُ فَفَلَقَ بِهِ هَامَ الْمُشْرِكِينَ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

91- Ji Enes (r.), bêşik Pêxemberê Xwedê (s.) di herba Uhudê de şûrek girt û got: Kî vî şûrî ji destê min digre? Temamê wan destên xwe dirêj kirin, her kesî digot; ez, ez. Resûlê Xwedê got: Kî yê bigrê û heqê wî bidiyê? Vêca tev paşve çûn. Ebû Ducane (r.) got: Ya Resûlellah! Ezê şûrî bi heqê wî ji destê te wergirim. Vêca ewî şûr wergirt û bi wî şûrî serên muşrikan firand. *Muslim rîwayet kiriye.*

٩٢- عَنِ الزُّبَيْرِ بْنِ عَدِيٍّ قَالَ: أَتَيْنَا أَنَسَ بْنَ مَالِكٍ ﷺ فَشَكَوْنَا إِلَيْهِ مَا نَلْقَى مِنَ الْحَجَّاجِ فَقَالَ: اِصْبِرُوا فَإِنَّهُ لَا يَأْتِي زَمَانٌ إِلَّا وَالَّذِي بَعْدَهُ شَرٌّ مِنْهُ حَتَّى تَلْقَوْا رَبَّكُمْ سَمِعْتُهُ مِنْ نَبِيِّكُمْ ﷺ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

92- Ji Zubeyr kurê 'Ediyy, got: Me şikayeta Heccac bire cem Enes kurê Malik (r.), got: Sebir bikin, çunkî bêguman çi zemanek nayên illa ew zemanê piştî wî dê ji wî nebaştir be, heta hûn lîqayê Rebbê xwe bibin. Min ev ji Pêxemberê we (s.) bihîstiye. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٩٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (بَادِرُوا بِالأَعْمَالِ سَبْعاً: هَلْ تَنْتَظِرُونَ إِلَّا فَقْراً مُنْسِياً، أَوْ غِنًى مُطْغِياً، أَوْ مَرَضًا مُفْسِداً، أَوْ هَرَمًا مُفَنِّداً، أَوْ مَوْتًا مُجْهِزاً، أَوِ الدَّجَّالَ، فَشَرُّ غَائِبٍ يُنْتَظَرُ، أَوِ السَّاعَةَ، فَالسَّاعَةُ أَدْهَى وَأَمَرُّ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

93- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye:

Beriya van her heft tiştan, bi bal kirina kar û 'emelên baş ve lezê bikin, ma hûn ne hêviya vana dikin:

-Feqîriya ku her tiştî dide jibîr kirin
-Dewlemendiya ku însan pê serxweş diçe
-Nexweşiya eqil û bedena însanî xerab dike
-Pîrîtiya ku derewê dide gotin
-Mirina bê wext û bê zeman
-Fitna Deccalî ya ku ne hazir herkes jê bi tirs û hêvî ye
-Yan ji wê qiyameta ku bela wê mezintir û tehltir in. *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hesen e.*

٩٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ يَوْمَ خَيْبَرَ: (لأُعْطِيَنَّ هَذِهِ الرَّايَةَ رَجُلاً يُحِبُّ اللَّهَ وَرَسُولَهُ، يَفْتَحُ اللَّهُ عَلَى يَدَيْهِ) قَالَ عُمَرُ ﷺ: مَا أَحْبَبْتُ الْإِمَارَةَ إِلَّا يَوْمَئِذٍ، فَتَسَاوَرْتُ لَهَا رَجَاءَ أَنْ أُدْعَى لَهَا، فَدَعَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَلِيَّ بْنَ أَبِي طَالِبٍ ﷺ فَأَعْطَاهُ إِيَّاهَا وَقَالَ: (امْشِ وَلَا تَلْتَفِتْ حَتَّى يَفْتَحَ اللَّهُ عَلَيْكَ) فَسَارَ عَلِيٌّ شَيْئًا ثُمَّ وَقَفَ وَلَمْ يَلْتَفِتْ فَصَرَخَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، عَلَى مَاذَا أُقَاتِلُ النَّاسَ، قَالَ: (قَاتِلْهُمْ حَتَّى يَشْهَدُوا أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ وَأَنَّ مُحَمَّدًا رَسُولُ اللَّهِ، فَإِذَا فَعَلُوا ذَلِكَ فَقَدْ مَنَعُوا مِنْكَ دِمَاءَهُمْ وَأَمْوَالَهُمْ إِلَّا بِحَقِّهَا وَحِسَابُهُمْ عَلَى اللَّهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

94- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) di roja Xeyberê de got: Ezê alayê bidme destê mirovekî ku ji Xwedê û Pêxemberê wî hez dike û Xwedê te'ala li ser destê wî veke. 'Umer (r.) got: Wê rojê tenê min daxwaza emîrtiyê kiribû û min ji bona vî îşî xwe dida pêş, ji bo ku gazî min bike ji bona dayina alayê. Lêbelê Resûlê Xwedê (s.) gazî, 'Elî kurê Ebû Talib kir; ala da wî û gotê bimeşe here li dûv xwe nenêre, ta Xwedê li ser te Xeyberê fetih bike. Vêca, 'Elî (r.) hinekî meşiya, paşê rawestiya. Lêbelê paş xwe ve nenêrî, bi dengek bilind bang kir: Ya Resûlê Xwedê! Li ser çi ez bi însanan re şer bikim? Resûlê Xwedê got: Şerê wan bike ta ku bêjin: Em şehadet didin ku ji xeyrê Xwedê me'bûdê heq çunîne û dîsa em şehde didin ku Muhemmed Resûlê wî ye. Zemanê ku ew kirin, wan malê xwe û canê xwe ji te parastin. Bes eger li gor Îslamê gunehkariya wan hebe dê bên ceza kirin. Hesabê wan dimîne li ser Xwedê te'ala. *Muslim rîwayet kiriye.*

  

## بَابُ الْمُجَاهَدَة

## MUCAHEDE/AMADEBÛN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَالَّذِينَ جَاهَدُوا فِينَا لَنَهْدِيَنَّهُمْ سُبُلَنَا وَإِنَّ اللَّهَ لَمَعَ الْمُحْسِنِينَ﴾

"Ew kesên di rêya me de mucahede kirin, emê wan bi ser rêyên xwe ve bibin. Bêguman Xweda digel mirovên baş e."[1]

﴿وَاعْبُدْ رَبَّكَ حَتَّى يَأْتِيَكَ الْيَقِينُ﴾

"Tu îbadetî Xwedayê xwe bike, heya yeqîn (mirin) were te."[2]

﴿وَاذْكُرِ اسْمَ رَبِّكَ وَتَبَتَّلْ إِلَيْهِ تَبْتِيلاً﴾

"Xwedayê xwe bîne bîra xwe: Bi qelbê xwe, bi temamî xwe bide bi bal wî ve."[3]

﴿فَمَنْ يَعْمَلْ مِثْقَالَ ذَرَّةٍ خَيْراً يَرَهُ﴾

"Kesê hindî zerrekê, 'emelek baş bike ew dê mukafata wê bibîne."[4]

﴿وَمَا تُقَدِّمُوا لِأَنْفُسِكُمْ مِنْ خَيْرٍ تَجِدُوهُ عِنْدَ اللَّهِ هُوَ خَيْراً وَأَعْظَمَ أَجْراً﴾

"Ew tiştên ji 'emelên baş ku hûn di beriya xwe de dişînin, hûn dê xêra wê li cem Xwedê baştir bibînin."[5]

﴿وَمَا تُنْفِقُوا مِنْ خَيْرٍ فَإِنَّ اللَّهَ بِهِ عَلِيمٌ﴾

"Ew xêrên ku hûn di rêya Xwedê de didin Xweda pê agahdar e."[6]

٩٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى قَالَ: مَنْ عَادَى لِي وَلِيّاً فَقَدْ آذَنْتُهُ بِالْحَرْبِ، وَمَا تَقَرَّبَ إِلَيَّ عَبْدِي بِشَيْءٍ أَحَبَّ إِلَيَّ مِمَّا افْتَرَضْتُ عَلَيْهِ، وَمَا يَزَالُ عَبْدِي يَتَقَرَّبُ إِلَيَّ بِالنَّوَافِلِ حَتَّى أُحِبَّهُ، فَإِذَا أَحْبَبْتُهُ كُنْتُ سَمْعَهُ الَّذِي يَسْمَعُ بِهِ وَبَصَرَهُ

1 Enkebût, 29/69.
2 Hîcr, 15/99.
3 3 Muzemmîl, 73/8.
4 Zîlzal, 99/7.
5 Muzemmîl, 73/20.
6 Beqere, 2/273.

الَّذِي يُبْصِرُ بِهِ، وَيَدَهُ الَّتِي يَبْطِشُ بِهَا، وَرِجْلَهُ الَّتِي يَمْشِي بِهَا، وَلَئِنْ سَأَلَنِي لَأُعْطِيَنَّهُ، وَلَئِنِ اسْتَعَاذَنِي لَأُعِيذَنَّهُ). رَوَاهُ البُخَارِي.

95- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Xwedayê te'ala gotiye: "Kesê neyartiya dostekî min bike, bêşik min îlana herbê pê re kiriye. Bi tiştekî çêtir ji yên ku min li ser wî ferz kiriye. 'Ebdê min nêzîkî min nabe 'ebdê min bi newafilan/sunnetan her nêzîkî min dibe ta ku ez ji wî hezbikim, wextê ku min jê hezkir, ezê bibim guhê wî ku pê dibihîze û ezê bibim çavê wî ku pê dibîne û ezê bibim destê wî ku pê dirajehê û ezê bibim lingê wî ku pê dimeşe. Sond dixwim, eger ew ji min bixwaze ezê daxwaza wî bidimê û eger ew xwe bispêre min ezê wî biparêzim." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٩٦- عَنْ أَنَسٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ فِيمَا يَرْوِيهِ عَنْ رَبِّهِ عَزَّ وَجَلَّ، قَالَ: (إِذَا تَقَرَّبَ الْعَبْدُ إِلَيَّ شِبْراً تَقَرَّبْتُ إِلَيْهِ ذِرَاعاً، وَإِذَا تَقَرَّبَ إِلَيَّ ذِرَاعاً تَقَرَّبْتُ مِنْهُ بَاعاً، وَإِذَا أَتَانِي يَمْشِي أَتَيْتُهُ هَرْوَلَةً). رَوَاهُ البُخَارِي.

96-Ji Enes (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.), ji Rebbê xwe 'ezze we celle rîwayet kiriye ku gotiye: "Ku 'ebdê min bi bostekî bi bal min ve were ezê çengekî bi bal ve nêzîk bibim, eger ew bi çengekî bi bal min ve were ezê gazekê bi bal ve nêzîk bibim û eger ew bi bal min ve bimeşe ezê bi bez bi bal ve werim." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٩٧- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (نِعْمَتَانِ مَغْبُونٌ فِيهِمَا كَثِيرٌ مِنَ النَّاسِ: الصِّحَّةُ، وَالْفَرَاغُ). رَوَاهُ البُخَارِي.

97-Ji kurê 'Ebbas (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Du nîmetên mezin hene, gellek însan qedrê wan nizanin; sihhet û valayî." *Buxarî rîwayet kiriye*

٩٨- عَنْ عَائِشَةَ ﷺ أَنَّ نَبِيَّ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَقُومُ مِنَ اللَّيْلِ حَتَّى تَتَفَطَّرَ، قَدَمَاهُ فَقُلْتُ لَهُ: لِمَ تَصْنَعُ هَذَا يَا رَسُولَ اللَّهِ وَقَدْ غَفَرَ اللَّهُ لَكَ مَا تَقَدَّمَ مِنْ ذَنْبِكَ وَمَا تَأَخَّرَ؟ قَالَ: (أَفَلَا أُحِبُّ أَنْ أَكُونَ عَبْداً شَكُوراً). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

98-Ji 'Aîşe (r.), digot: Pêxember (s.) bi şev radibû, heta her du piyên

  

wî diwerimîn, îbadet dikir. Min got: Ya Resûlê Xwedê! Tu bo çi wiha dikî? Heçku/welhal Xwedê te'ala gunehên te yên pêşîn û paşîn xefirandiye. Got: Ma ez heznekim ku bibim 'ebdekî şikurdar." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩٩- عَنْ عَائِشَةَ ﵂ أَنَّهَا قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا دَخَلَ الْعَشْرُ أَحْيَا اللَّيْلَ وَأَيْقَظَ أَهْلَهُ وَجَدَّ وَشَدَّ الْمِئْزَرَ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

99- Ji 'Aîşe (r.), gotiye: "Zemanê Pêxemberê Xwedê (s.) diket dehê meha Remezanê yên paşê, şeva xwe bi îbadetê derbas dikir, ehlê xwe hişyar dikir û xwe dişidand bi şiklekî qewî xwe dida îbadetê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (اَلْمُؤْمِنُ الْقَوِيُّ خَيْرٌ وَأَحَبُّ إِلَى اللَّهِ مِنَ الْمُؤْمِنِ الضَّعِيفِ، وَفِي كُلٍّ خَيْرٌ، احْرِصْ عَلَى مَا يَنْفَعُكَ، وَاسْتَعِنْ بِاللَّهِ وَلَا تَعْجِزْ، وَإِنْ أَصَابَكَ شَيْءٌ فَلَا تَقُلْ: لَوْ أَنِّي فَعَلْتُ كَانَ كَذَا وَكَذَا، وَلَكِنْ قُلْ: قَدَّرَ اللَّهُ وَمَا شَاءَ فَعَلَ فَإِنَّ لَوْ تَفْتَحُ عَمَلَ الشَّيْطَانِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

100- Ji Ebû Hureyre (r.), Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Mu'minê qewî xêrtir û baştir e li nik Xwedê te'ala ji muminê ze'îf. Di her duyan de jî xêr heye. Pey wî tiştî bikeve ku ji dîn û dunya te re fayda te tê de hebe. Li ser kar û xebata xwe ji Xwedê te'ala arîkariyê bixwaze, sistiyê neke. Eger tiştek hate serê te nebêje: "Eger min wisa kiriba, wisa wisa biba." Lêbelê bêje: "Teqdîra Xwedê ye, tişta ku wî bivê wê biket." Çunkî gotina; lew/xwezî 'emelê şeytanî vedike. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﵁ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (حُجِبَتِ النَّارُ بِالشَّهَوَاتِ، وَحُجِبَتِ الْجَنَّةُ بِالْمَكَارِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

101- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Cehennem bi daxwazên nefsê hatiye perdekirin û cennet jî bi tiştên nexweş hatiye perdekirin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٢- عَنْ أَبِي عَبْدِ اللَّهِ حُذَيْفَةَ بْنِ الْيَمَانِ ﵁ قَالَ: صَلَّيْتُ مَعَ النَّبِيِّ ﷺ ذَاتَ لَيْلَةٍ فَافْتَتَحَ

الْبَقَرَةَ فَقُلْتُ: يَرْكَعُ عِنْدَ الْمِائَةِ، ثُمَّ مَضَى فَقُلْتُ: يُصَلِّي بِهَا فِي رَكْعَةٍ فَمَضَى فَقُلْتُ: يَرْكَعُ بِهَا، ثُمَّ افْتَتَحَ النِّسَاءَ فَقَرَأَهَا، ثُمَّ افْتَتَحَ آلَ عِمْرَانَ فَقَرَأَهَا، يَقْرَأُ مُتَرَسِّلاً، إِذَا مَرَّ بِآيَةٍ فِيهَا تَسْبِيحٌ سَبَّحَ، وَإِذَا مَرَّ بِسُؤَالٍ سَأَلَ، وَإِذَا مَرَّ بِتَعَوُّذٍ تَعَوَّذَ، ثُمَّ رَكَعَ فَجَعَلَ يَقُولُ: (سُبْحَانَ رَبِّيَ الْعَظِيمِ) فَكَانَ رُكُوعُهُ نَحْواً مِنْ قِيَامِهِ، ثُمَّ قَالَ: (سَمِعَ اللَّهُ لِمَنْ حَمِدَهُ رَبَّنَا لَكَ الْحَمْدُ) ثُمَّ قَامَ قِيَاماً طَوِيلاً قَرِيبًا مِمَّا رَكَعَ، ثُمَّ سَجَدَ فَقَالَ: (سُبْحَانَ رَبِّيَ الأَعْلَى) فَكَانَ سُجُودُهُ قَرِيبًا مِنْ قِيَامِهِ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

102- Ji Ebû ‘Ebdullah Huzeyfe kurê Yeman (r.), gotiye: Min şevekê digel Resûlê Xwedê (s.) nimêj kir. Resûlê Xwedê dest bi xwendina sûretê “Beqere” kir. Min dilê xwe de got: Wê li cem temamkirina sed ayetan here rukû‘ê, paşê ew borî. Min got: Ew dê rekata xwe bi vî sûretê temam bike, paşê sûretê Beqere temam kir, dest bi sûretê Nîsa kir, ew jî xwend, paşê dest bi sûretê Alî ‘Îmran kir, ew jî xwend û giran giran dixwend. Dema ku ayetek bixwenda û tê de “tesbîh” heba tesbîh dida û dema ku li ber ayetekê derbas bibûya û di wê ayetê de sûal heba sûal dikir û dema ku li ber ayeta “te‘awwûzê” derbas biba “te‘awwûz” dikir. Paşê çû rukû‘ê û dest bi gotina “سُبْحَانَ رَبِّيَ الْعَظِيمِ” kir. Rûku‘a wî jî hema wekî qiyama wî bû. Paşê rabû qiyamê û got: “سَمِعَ اللَّهُ لِمَنْ حَمِدَهُ، رَبَّنَا وَلَكَ الْحَمْدُ” qiyamek dirêj nêzîkî rûku‘a borî. Paşê çû secdê û got: “سُبْحَانَ رَبِّيَ الأَعْلَى” sucûda wî jî nêzîkî qiyama wî bû.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٣- عَنْ إِبْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: صَلَّيْتُ مَعَ النَّبِيِّ ﷺ لَيْلَةً فَأَطَالَ الْقِيَامَ حَتَّى هَمَمْتُ بِأَمْرِ سَوْءٍ، قِيلَ: وَمَا هَمَمْتَ بِهِ؟ قَالَ: هَمَمْتُ أَنْ أَجْلِسَ وَأَدَعَهُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

103-Ji kurê Mes‘ûd (r.), gotiye: “Min digel Pêxemberê Xwedê (s.) di şevekê de nimêj kir, qiyama xwe dirêj kir heta min qesda tiştek nebaş kir. Ji min re hate gotin: Te qesda çi kir? Min got: Min niyet kir ku ez rûnim û terka wî bikim.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٤- عَنْ أَنَسٍ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (يَتْبَعُ الْمَيِّتَ ثَلاثَةٌ: أَهْلُهُ وَمَالُهُ وَعَمَلُهُ، فَيَرْجِعُ اثْنَانِ وَيَبْقَى وَاحِدٌ، يَرْجِعُ أَهْلُهُ وَمَالُهُ وَيَبْقَى عَمَلُهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

104- Ji Enes (r.), Resûlullah (s.) gotiye: “Sê tişt li dûv mirî diçin: Ehl û mal û ‘emelê wî. Didu vedigerin yek li bal wî dimîne; ehl û mal vedigerin û ‘emelê wî dimîne.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٥- عَنْ إِبْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (اَلْجَنَّةُ أَقْرَبُ إِلَى أَحَدِكُمْ مِنْ شِرَاكِ نَعْلِهِ وَالنَّارُ مِثْلُ ذَلِكَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

105- Ji Îbnu Mes‘ûd (r.), gotiye: Resûlê Xwedê (s.) gotiye: “Cennet, ji qeytanê pêlava yekî ji we nêzîktirê we ye. Agir jî wisa ye.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٠٦- عَنْ أَبِي فِرَاسٍ رَبِيعَةَ بْنِ كَعْبٍ الأَسْلَمِيِّ خَادِمِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَمِنْ أَهْلِ الصُّفَّةِ ﷺ قَالَ: كُنْتُ أَبِيتُ مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَآتِيهِ بِوَضُوئِهِ وَحَاجَتِهِ، فَقَالَ: (سَلْنِي) فَقُلْتُ: أَسْأَلُكَ مُرَافَقَتَكَ فِي الْجَنَّةِ، فَقَالَ (أَوْ غَيْرَ ذَلِكَ) قُلْتُ: هُوَ ذَاكَ، قَالَ: (فَأَعِنِّي عَلَى نَفْسِكَ بِكَثْرَةِ السُّجُودِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

106- Ji Ebû Firas Rebî‘e kurê Ke‘b el-Eslemî, xizmetkarê Resûlê Xwedê (s.) û ji ehlê suffê ye (r.), gotiye: Ez bi şev digel Pêxemberê Xwedê (s.) dimam, min ava destnimêja wî jê re dianî û xizmeta wî dikir. Vêca wî ji min re got: “Ji min bixwaze.” Min got: Ez ji te hevaltiya te ya Cennetê dixwazim. Got. “Tiştek din.” Min got: Hema her ew. Got: “Arîkariya min bi pirkirina secdan bike.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٧- عَنْ أَبِي عَبْدِ اللَّهِ وَيُقَالُ أَبُو عَبْدِ الرَّحْمَنِ ثَوْبَانَ ﷺ مَوْلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (عَلَيْكَ بِكَثْرَةِ السُّجُودِ، فَإِنَّكَ لَنْ تَسْجُدَ لِلَّهِ سَجْدَةً إِلَّا رَفَعَكَ اللَّهُ بِهَا دَرَجَةً وَحَطَّ عَنْكَ بِهَا خَطِيئَةً). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

107- Ji azadbûyê Resûlê Xwedê (s.), Ebû ‘Ebdullah Sewban (r.), gotiye: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye ku digot: “Lazimê te ye, tu gelekî ji Xwedê re secde bibî. Çunkî çend qeder tu ji Xwedê re secde bibî, dê ji bo te dereceke bilind bike û pê gunehekî te bibe.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٨- عَنْ أَبِي صَفْوَانَ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ بُسْرٍ الأَسْلَمِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (خَيْرُ

النَّاسِ مَنْ طَالَ عُمُرُهُ وَحَسُنَ عَمَلُهُ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

108-Ji Ebû Safwan 'Ebdullah kurê Bûsr el-Eslemî (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Baştirînê mirovan ew e ku temenê wî dirêj û 'emelê wî jî baş be." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye: Hesen e.*

١٠٩- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: غَابَ عَمِّي أَنَسُ بْنُ النَّضْرِ ﷺ عَنْ قِتَالِ بَدْرٍ، فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ غِبْتُ عَنْ أَوَّلِ قِتَالٍ قَاتَلْتَ الْمُشْرِكِينَ، لَئِنِ اللَّهُ أَشْهَدَنِي قِتَالَ الْمُشْرِكِينَ لَيَرَيَنَّ اللَّهُ مَا أَصْنَعُ، فَلَمَّا كَانَ يَوْمُ أُحُدٍ انْكَشَفَ الْمُسْلِمُونَ، فَقَالَ: اَللَّهُمَّ أَعْتَذِرُ إِلَيْكَ مِمَّا صَنَعَ هَؤُلَاءِ- يَعْنِي أَصْحَابَهُ- وَأَبْرَأُ إِلَيْكَ مِمَّا صَنَعَ هَؤُلَاءِ- يَعْنِي الْمُشْرِكِينَ- ثُمَّ تَقَدَّمَ فَاسْتَقْبَلَهُ سَعْدُ بْنُ مُعَاذٍ، فَقَالَ يَا سَعْدُ بْنَ مُعَاذٍ، اَلْجَنَّةُ وَرَبِّ الْكَعْبَةِ، إِنِّي أَجِدُ رِيحَهَا مِنْ دُونِ أُحُدٍ، قَالَ سَعْدٌ: فَمَا اسْتَطَعْتُ يَا رَسُولَ اللَّهِ مَا صَنَعَ، قَالَ أَنَسٌ: فَوَجَدْنَا بِهِ بِضْعًا وَثَمَانِينَ ضَرْبَةً بِالسَّيْفِ أَوْ طَعْنَةً بِرُمْحٍ، أَوْ رَمْيَةً بِسَهْمٍ، وَوَجَدْنَاهُ قَدْ قُتِلَ وَمَثَّلَ بِهِ الْمُشْرِكُونَ، فَمَا عَرَفَهُ أَحَدٌ إِلَّا أُخْتُهُ بِبَنَانِهِ، قَالَ أَنَسٌ: كُنَّا نَرَى أَوْ نَظُنُّ، أَنَّ هَذِهِ الْآيَةَ نَزَلَتْ فِيهِ وَفِي أَشْبَاهِهِ (مِنَ الْمُؤْمِنِينَ رِجَالٌ صَدَقُوا مَا عَاهَدُوا اللَّهَ عَلَيْهِ.....إِلَى آخِرِ الْآيَةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

109- Ji Enes (r.), gotiye: Mamê min Enes kurê Nadir di cenga Bedrê de hazir nebû. Mamê min got: Ya Resûlê Xwedê! Ez hazirî cenga te ya pêşîn bi muşrikan re nebûm, eger Xwedê te'ala min hazirî cenga wan bike, Xwedê te'ala helbet dê bibîne ka ezê çi bikim. Zemanê ku cenga Uhudê dest pê kir û misilmanan ciyê xwe berdan (tîravêjan guhê xwe nedan te'lîmatên Resûlê Xwedê (s.), mamê min got: Xwedayê min! Li min bibore ji ber ya van hevalên min kirî û ez xwe bêrî dikim ji kirinên wan muşrikan. Paşê Enes pê da çû, Se'd kurê Mu'az ket pêşiya wî, Enes jê re got: Sond dixwim bi Rebbê Ke'beyê, ez bêhna cennetê li cem Uhudê dikim. Se'd dibêje: Ya Resûlê Xwedê! Min neşiya ku ez wekî Enes şer bikim. Enes got: Me, mamê xwe Enes kurê Nadir dît ku heştê û çend derbên bi şûran –yan bi riman– yan bi tîran– lê hebûn û me dît ku hatiye kuştin û muşrikan laşê wî xerab kiribûn. Ji xeynî xuşka wî çi kesî ew nasnekir, wê jî ew bi tiliyên wî naskir. Enes got: Me dizanî û yan jî me zen dikir ku ev ayeta han, di derheqê wî

û yên wekî wî de nazil bûye. “Ji mu’minan hinek mirov hene soza xwe ya digel Xwedê te‘ala anîne cih.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٠- عَنْ أَبِي مَسْعُودٍعُقْبَةَ بْنِ عَمْروالأَنْصَارِيِّ ﷺ قَالَ: لَمَّا نَزَلَتْ آيَةُ الصَّدَقَةِ كُنَّا نُحَامِلُ عَلَى ظُهورِنَا فَجَاء رَجُل فَتَصَدَّقَ بِشَيءٍ كَثِيرٍ، وَجَاءَ رَجُل آخَرَ فَتَصَدَّقَ بِصَاعٍ فَقَالُوا: إِنَّ اللَّهَ لَغَنِيٌّ عَنْ صَاعِ هَذَا فَنَزَلَتْ:(الَّذِينَ يَلْمِزُونَ الْمُطَّوِّعِينَ مِنَ الْمُؤْمِنِينَ فِي الصَّدَقَاتِ وَالَّذِينَ لَا يَجِدُونَ إِلَّا جُهْدَهُمْ ... التَّوْبَة٧٩). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

110- Ji Ebû Mes‘ûd ‘Uqbe kurê ‘Emr el-Ensarî (r.), gotiye: “Wextê ayeta sedeqê nazil bû me –ji bo ku em jî sedeqê bidin– hemmalî dikir, vêca mirovek hat bi miqdarekî zêde sedeqe da, munafiqan gotin: Eva riyakarî ye. Mirovek dî hat sa‘ek –çar kulm– da, wana dîsa got: Hewcebûna Xwedê bi vê sa‘ê tuneye. Vêca ev ayet nazil bû;

﴿الَّذِينَ يَلْمِزُونَ الْمُطَّوِّعِينَ مِنَ الْمُؤْمِنِينَ فِي الصَّدَقَاتِ وَالَّذِينَ لَا يَجِدُونَ إِلَّا جُهْدَهُمْ فَيَسْخَرُونَ مِنْهُمْ سَخِرَ اللَّهُ مِنْهُمْ وَلَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ﴾

“Ew kesên (munafiqên) ku di bara sedeqeyan de wan bawermendên ku bi dilên xwe (sedeqan didin) û wan bawermendên ku ji hêza xwe pêve tiştekî din nabînin ku bikin sedeqe, ‘eybdar dikin û tinazên xwe bi wan dikin. Ellah te‘ala wan kiriye (mijara) tinazê û ji wan re ‘ezabekî cansoj heye.” [1] *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١١- عَنْ سَعِيدِ بْنِ عَبْدِ الْعَزِيزِ عَنْ رَبِيعَةَ بْنِ يَزِيدَ، عَنْ أَبِي إِدْرِيسَ الْخَوْلانِيِّ عَنْ أَبِي ذَرٍّ بْنِ جُنَادَةَ ﷺ عَنْ النَّبِيِّ ﷺ

فِيمَا يَرْوِى عَنِ اللَّهِ تَبَارَكَ وَتَعَالَى أَنَّهُ قَالَ:(يَا عِبَادِي إِنِّي حَرَّمْتُ الظُّلْمَ عَلَى نَفْسِي وَجَعَلْتُهُ بَيْنَكُمْ مُحَرَّمًا فَلَا تَظَالَمُوا يَا عِبَادِي كُلُّكُمْ ضَالٌّ إِلَّا مَنْ هَدَيْتُهُ فَاسْتَهْدُونِي أَهْدِكُمْ، يَا عِبَادِي كُلُّكُمْ جَائِعٌ إِلَّا مَنْ أَطْعَمْتُهُ فَاسْتَطْعِمُونِي أُطْعِمْكُمْ، يَا عِبَادِي كُلُّكُمْ عَارٍ إِلَّا مَنْ كَسَوْتُهُ فَاسْتَكْسُونِي أَكْسُكُمْ، يَا عِبَادِي إِنَّكُمْ تُخْطِئُونَ بِاللَّيْلِ وَالنَّهَارِ وَأَنَا

1 Tewbe, 79.

أَغْفِرُ الذُّنُوبَ جَمِيعاً فَاسْتَغْفِرُونِي أَغْفِرْ لَكُمْ، يَا عِبَادِي إِنَّكُمْ لَنْ تَبْلُغُوا ضَرِّي فَتَضُرُّونِي، وَلَنْ تَبْلُغُوا نَفْعِي فَتَنْفَعُونِي، يَا عِبَادِي لَوْ أَنَّ أَوَّلَكُمْ وَآخِرَكُمْ وَإِنْسَكُمْ وَجِنَّكُمْ كَانُوا عَلَى أَتْقَى قَلْبِ رَجُلٍ وَاحِدٍ مِنْكُمْ مَا زَادَ ذَلِكَ فِي مُلْكِي شَيْئاً، يَا عِبَادِي لَوْ أَنَّ أَوَّلَكُمْ وَآخِرَكُمْ وَإِنْسَكُمْ وَجِنَّكُمْ كَانُوا عَلَى أَفْجَرِ قَلْبِ رَجُلٍ وَاحِدٍ مِنْكُمْ مَا نَقَصَ ذَلِكَ مِنْ مُلْكِي شَيْئًا يَا عِبَادِي لَوْ أَنَّ أَوَّلَكُمْ وَآخِرَكُمْ وَإِنْسَكُمْ وَجِنَّكُمْ قَامُوا فِي صَعِيدٍ وَاحِدٍ فَسَأَلُونِي فَأَعْطَيْتُ كُلَّ إِنْسَانٍ مَسْأَلَتَهُ مَا نَقَصَ ذَلِكَ مِمَّا عِنْدِي إِلَّا كَمَا يَنْقُصُ الْمِخْيَطُ إِذَا أُدْخِلَ الْبَحْرِ، يَا عِبَادِي إِنَّمَا هِيَ أَعْمَالُكُمْ أُحْصِيهَا لَكُمْ ثُمَّ أُوَفِّيكُمْ إِيَّاهَا، فَمَنْ وَجَدَ خَيْراً فَلْيَحْمَدِ اللَّهَ، وَمَنْ وَجَدَ غَيْرَ ذَلِكَ فَلَا يَلُومَنَّ إِلَّا نَفْسَهُ» قَالَ سَعِيدُ: كَانَ أَبُو إِدْرِيسَ إِذَا حَدَّثَ بِهَذَا الْحَدِيثِ جَثَا عَلَى رُكْبَتَيْهِ. رَوَاهُ مُسْلِم. وَرَوَيْنَا عَنِ الإِمَامِ أَحْمَدَ بِن حَنْبَلٍ رَحِمهُ الله قَالَ: لَيْسَ لِأَهْلِ الشَّامِ حَدِيثٌ أَشْرَفَ مِنْ هَذَا الْحَدِيثِ.

111- Ji Se'îd kurê 'Ebdulezîz ji Rebî' kurê Yezîd ji Ebû Îdrîs el-Xewlanî ji Ebû Zerr Cundeb kurê Cunade (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) ji Xwedê te'ala radigihîne ku Xwedayê te'ala gotiye:

"Ya 'îbadên min! Min zilm li ser xwe heram kiriye û min ew di nav we de jî heram kiriye, vêca hûn zilm û neheqiyê li hevdu nekin.

Ya 'îbadên min! Ji xeynî yê min wî hîdayet kirî hûn bi temamî di delaletê de bûn. Vêca hîdayetê ji min bixwazin da ku ez we hîdayet bikim.

Ya 'îbadên min! Ji bilî ewê ku min wî têrkirî hûn hemû birçî bûn. Naxwe ji min têrbûnê bixwazin da ku ez we têr bikim.

Ya 'îbadên min! Ji xeynî wî yê ku min wî bi cil kirî hûn hemû tazî bûn. Vêca bicilbûnê ji min bixwazin da ku ez we bi cil bikim.

Ya 'îbadên min! Hûn bi şev û roj gunehan dikin û ez jî temamî gunehan dixefirînim. Vêca xefirandina gunehên xwe ji min bixwazin da ku ez gunehên we bixefirînim.

Ya 'îbadên min! Hûn nagihêjin wê çendê ku hûn bişên zerarê bidine min û hûn nagîhêjin wî qasî ku hûn bikaribin fêdê bidine min.

Ya 'îbadên min! Eger pêşiyên we û paşiyên we û însên we û cinên we mîna dilê merivekî herî mutteqî bin, ev tu tiştî di mulkê min de zêde nake.

Ya 'îbadên min! Eger pêşiyên we û paşiyên we û însên we û cinên we mîna

dilê merivekî xerabtirînê we bin, ev jî di mulkê min de tu tiştî kêm nake.

Ya ‘îbadên min! Eger pêşiyên we û paşiyên we û însên we û cinên we di yek meydanê de kom bibin û daxwaza xwe ji min bikin û ez daxwaza heryekî bidimê, ev di mulkê min de ji qasî ku derzî bikeve deryayê pêve tiştekî kêm nake.

Ya ‘îbadên min! Bêguman ew, ‘emelên we ne, ez ji bo we dihesibînim, paşê jî bêkêmahî mukafata wan ez dê bidime we. Vêca kî ji we xêr û başî dît bila hemdê Xwedê bike û kî rastî tiştekî din hat ji xwe pêve bila ji tu kesî gazinan neke.

Se‘îd gotiye: Ebû Îdrîs, zemanê ev hedîs digot li ser çokên xwe rûdinişt.

*Muslim rîwayet kiriye.*

Me ji Îmam Ehmed kurê Henbel (r.), rîwayet kiriye ku gotiye: Ji bona ehlê Şamê ji vê hedîsê baştir tu hedîs çunîne.

## بَابُ الْحَثِّ عَلَى الإِزْدِيَادِ مِنَ الْخَيْرِ

## TEŞWÎQA ZÊDEKIRINA KARÊN QENC

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿أَوَلَمْ نُعَمِّرْكُمْ مَا يَتَذَكَّرُ فِيهِ مَنْ تَذَكَّرَ وَجَاءَكُمُ النَّذِيرُ فَذُوقُوا فَمَا لِلظَّالِمِينَ مِنْ نَصِيرٍ﴾

قَالَ ابنْ عَبَّاس وَالْمُحَقِّقُون: مَعنَاهُ أَوَلَمْ نُعَمِّرْكُمْ سِتِّينَ سَنَةً؟ وَيُؤَيِّدُهُ الْحَدِيثُ الَّذي سَنَذْكُرُهُ إِنْ شَاءَ الله تَعَالَى، وَقِيلَ: مَعْنَاهُ ثَمَانِي عَشَرَةَ سَنَةً، وَقِيلَ: أَرْبَعِينَ سَنَةً: قَالَهُ الحَسَنُ وَالْكَلبِيُّ وَمَسْرُوقُ، وَنُقِلَ عَنِ ابن عَبَّاس أَيضاً، وَنَقَلُوا أَنَّ أَهْلَ الْمدِينَةِ كَانُوا إِذَا بَلَغَ أَحَدُهُمْ أَرْبَعِينَ سَنَةً تَفَرَّغَ لِلْعِبَادَة، وَقِيلَ: هُوَ الْبُلُوغُ. وَقَوْلُهُ تَعَالَى: (وَجَاءَكُمُ النَّذِيرُ) قَالَ ابْنُ عَبَّاسٍ وَالجُمْهُورُ:هُوَ النَّبِيُّ ﷺ وَقِيلَ الشَّيْبُ، قَالَهُ عِكْرِمَةُ وَابْنُ عُيَيْنَةَ وَغَيْرُهُمَا، وَالله أَعْلَمُ.

“Ma me, temenekî wilo neda we ku kesê bifikire bikaribe di wî de bifikire

û di wî de şîret bigire? Ma hişyarker ji we re nehatibû?" [1]

Îbnu 'Ebbas û muheqqiqînan gotine: Mana ayetê eva ye: Ma min şêst sal temen nedaye we? Ev hedîsa ku emê hê bînin vê gotinê qewî dike. Hinekan gotine: Hejdeh sal e. Hinekan jî gotine: Çil sal e. Ev gotina Hesenê Basrî û Kelbî û Musruqe û ji Îbnu 'Ebbas jî neqil bûye û neqil kirine. Zemanê ehlê Medînê yek ji wan temenê wî bigihîşta çil salî xwe ji bona îbadetê vala dikir. Hinekan jî gotine: Balix bûne.

Gotina Xwedê; "Ma hişyarker ji we re nehatibû"? Îbnu 'Ebbas û cumhûrê 'aliman gotine: "Hişyarker" Pêxember (s.) e. 'Îkrime û Îbnu 'Uyeyne û xeyrê wan jî gotine: "Hişyarker" mûyên spî ne. Xwedê çêtir dizane.

١١٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (أَعْذَرَ اللَّهُ إِلَى امْرِئٍ أَخَّرَ أَجَلَهُ حَتَّى بَلَغَ سِتِّينَ سَنَةً). رَوَاهُ البُخَارِي.

وَقَالَ الْعُلَمَاءِ: مَعْنَاهُ لَمْ يَتْرُكْ عُذْراً إِذَا أَمْهَلَهُ هَذِهِ الْمُدَّةَ.

112- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.), gotiye: "Xwedê hincet nehiştiye ji wî kesê ku temenê wî gîhandibe şêst salî." *Buxarî riwayet kiriye.*

'Aliman gotine: "Xwedê ji bo wî tu hincet nehêlaye, çunkî Xwedê ji bo wî evqas demê han daye."

١١٣- عَنْ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: كَانَ عُمَرُ ﷺ يُدْخِلُنِي مَعَ أَشْيَاخِ بَدْرٍ، فَكَأَنَّ بَعْضَهُمْ وَجَدَ فِي نَفْسِهِ، فَقَالَ: لِمَ يَدْخُلُ هَذَا مَعَنَا وَلَنَا أَبْنَاءٌ مِثْلُهُ؟ فَقَالَ عُمَرُ: إِنَّهُ مَنْ حَيْثُ عَلِمْتُمْ، فَدَعَانِي ذَاتَ يَوْمٍ فَأَدْخَلَنِي مَعَهُمْ، فَمَا رَأَيْتُ أَنَّهُ دَعَانِي يَوْمَئِذٍ إِلَّا لِيُرِيَهُمْ، قَالَ: مَا تَقُولُونَ فِي قَوْلِ اللَّهِ: (إِذَا جَاءَ نَصْرُ اللَّهِ وَالْفَتْحُ) فَقَالَ بَعْضُهُمْ: أُمِرْنَا نَحْمَدُ اللَّهَ وَنَسْتَغْفِرُهُ إِذَا نَصَرَنَا وَفَتَحَ عَلَيْنَا، وَسَكَتَ بَعْضُهُمْ فَلَمْ يَقُلْ شَيْئًا، فَقَالَ لِي: أَكَذَاكَ تَقُولُ يَا ابْنَ عَبَّاسٍ: فَقُلْتُ: لَا، قَالَ: فَمَا تَقُولُ؟ قُلْتُ: هُوَ أَجَلُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَعْلَمَهُ لَهُ، قَالَ (إِذَا جَاءَ نَصْرُ اللَّهِ وَالْفَتْحُ) وَذَلِكَ عَلَامَةُ أَجَلِكَ (فَسَبِّحْ بِحَمْدِ رَبِّكَ وَاسْتَغْفِرْهُ إِنَّهُ كَانَ تَوَّابًا) فَقَالَ عُمَرُ ﷺ: مَا أَعْلَمُ مِنْهَا إِلَّا مَا تَقُولُ. رَوَاهُ البُخَارِي.

113- Ji Îbnu ‘Ebbas (r.), gotiye: ‘Umer (r.), ez digel mezinên Bedrê dibirim meclisa şûrayê. Li ser vê yekê hindekan li xwe xweş neanîn û gotin: Ji bo çi ev piçûkê han digel me tê vêdê, wekî wî piçûkên me jî hene? ‘Umer (r.) got: Hûn dizanin ku ew ji cîhekî çawa ye –ji cîhekî bilind e– vêca rojekê gazî min kir ez digel wan beşdarê meclisa şûrayê kirim, bes ez birim da ku wê rojê min nîşanî wan bide –bo ku bide zanîn kanî ez çi kesim– piştî ku meclis hate girêdan ‘Umer (r.) ji wan re got: Hûn di derbarê gotina Xwedê de çi dibêjin: ‘Gava ku arîkariya Ellah te‘ala û fetha (serkevtina Mekkeyê) bê? Hinekan got: “Emrê me hatiye kirin ku hemdê wî bikin û em teleba xefirandina gunehên xwe ji Xwedê te‘ala bikin, zemanê Xwedê arîkariya me û serkevtin da me. Hinekan jî şukut kirin tiştek ne gotin.” Îmam ‘Umer ji min re got: Ey ‘Ebdullahê kurê ‘Ebbas! Tu jî wisa dizanî? Min got: Na. ‘Umer gotê tu çi dibêje? Min got: Ew ecelê Resûlê Xwedê ye (s.), Xwedê te‘ala bi wî daye zanîn. Xwedayê te‘ala gotiye: ‘Gava ku arîkariya Ellah te‘ala û fetha (serkevtina Mekkeyê) bê ew nîşana ecela te ye. Bi hemdê Xwedayê xwe pak bidêre û ji wî lêborînê bixwaze. Lewra ew, Tewwab (Tobepejrên) e. ‘Umer got: “Bes ez jî wekî te dizanim.” *Buxarî riwayet kirine*

١١٤- عَنْ عَائِشَةَ ﵂ عَنْهَا قَالَتْ: مَا صَلَّى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ صَلَاةً بَعْدَ أَنْ نَزَلَتْ عَلَيْهِ: (إِذَا جَاءَ نَصْرُ اللَّهِ وَالْفَتْحُ) إِلَّا يَقُولُ فِيهَا: (سُبْحَانَكَ رَبَّنَا وَبِحَمْدِكَ، اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي).

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَ فِي رِوَايَةٍ فِي الصَّحِيحَيْنِ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُكْثِرُ أَنْ يَقُولَ فِي رُكُوعِهِ وَسُجُودِهِ سُبْحَانَكَ: (اللَّهُمَّ رَبَّنَا وَبِحَمْدِكَ، اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي) يَتَأَوَّلُ الْقُرْآنَ مَعْنَى (يَتَأَوَّلُ الْقُرْآنَ) أَيْ يَعْمَلُ مَا أُمِرَ بِهِ فِي الْقُرْآنِ فِي قَوْلِهِ تَعَالَى (فَسَبِّحْ بِحَمْدِ رَبِّكَ وَاسْتَغْفِرْهُ) وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُكْثِرُ أَنْ يَقُولَ قَبْلَ أَنْ يَمُوتَ (سُبْحَانَكَ اللهُمَّ وَبِحَمْدِكَ، أَسْتَغْفِرُكَ وَأَتُوبُ إِلَيْكَ) قَالَتْ عَائِشَةَ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ مَا هَذِهِ الْكَلِمَاتُ الَّتِي أَرَاكَ أَحْدَثْتَهَا تَقُولُهَا قَالَ: (جُعِلَتْ لِي عَلَامَةٌ فِي أُمَّتِي إِذَا رَأَيْتُهَا قُلْتُهَا) ﴿إِذَا جَاءَ نَصْرُ اللَّهِ وَالْفَتْحُ﴾ إِلَى آخِرِ السُّورَةِ.

وَفِي رِوَايَةٍ له كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُكْثِرُ مِنْ قَوْلِ: (سُبْحَانَ اللَّهِ وَبِحَمْدِهِ أَسْتَغْفِرُ اللَّهَ

وَأَتُوبُ إِلَيْهِ) قَالَتْ: قُلْتُ يَا رَسُولَ اللَّهِ أَرَاكَ تُكْثِرُ مِنْ قَوْلِ: (سُبْحَانَ اللَّهِ وَبِحَمْدِهِ أَسْتَغْفِرُ اللَّهَ وَأَتُوبُ إِلَيْهِ) فَقَالَ: (أَخْبَرَنِي رَبِّي أَنِّي سَأَرَى عَلَامَةً فِي أُمَّتِي فَإِذَا رَأَيْتُهَا أَكْثَرْتُ مِنْ قَوْلِ سُبْحَانَ اللَّهِ وَبِحَمْدِهِ، أَسْتَغْفِرُ اللَّهَ وَأَتُوبُ إِلَيْهِ، فَقَدْ رَأَيْتُهَا (إِذَا جَاءَ نَصْرُ اللَّهِ وَالْفَتْحُ) فَتْحُ مَكَّةَ (وَرَأَيْتَ النَّاسَ يَدْخُلُونَ فِي دِينِ اللَّهِ أَفْوَاجًا فَسَبِّحْ بِحَمْدِ رَبِّكَ وَاسْتَغْفِرْهُ إِنَّهُ كَانَ تَوَّابًا).

114- Ji ‘Aîşe (r.), gotiye: Piştî ku ayeta ﴿إِذَا جَاءَ نَصْرُ اللَّهِ وَالْفَتْحُ﴾ nazilbû, çiqas ku nimêj bikira digot: سُبْحَانَكَ رَبَّنَا وَبِحَمْدِكَ، اَللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي "Rebbê me! Bi hemdê te, te pak didêrim. Xwedayê min, tu min bixefirîne!" *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Rîwayetek din, di Buxarî û Muslim de ji ‘Aîşe, Resûlê Xwedê (s.) di rukû‘ û sucûd de digot: سُبْحَانَكَ اللَّهُمَّ رَبَّنَا وَبِحَمْدِكَ، اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي *"Rebbê me! Bi hemdê te, te pak didêrim. Xwedayê min! Tu min bixefirîne."* Ev gotina Resûlê Xwedê "bîlfi‘l" heqîqet dibû maneya wê tefsîr ji bo vî sûretê Qur‘ana Pîroz.

Di rîwayeteke Muslim de: Beriya wefata xwe, Pêxemberê Xwedê (s.) gelek caran digot: "Xwedayê min! Bi hemdê te, te pak didêrim, tu min bixefirîne û bi bal te ve tobe dikim." ‘Aîşe got: Ya Resûlê Xwedê eva çi kelîme ne te peydakirine û tu wana tekrar tekrar dibêjî? Resûlê Ekrem (s.) got: "Ji bona ummeta min nîşanek peyda bûye, wextê wî ‘elametî dibînim, ez wan kelîmana dibêjim ﴿إِذَا جَاءَ نَصْرُ اللَّهِ وَالْفَتْحُ﴾.

Li gor rîwayetek dî ya Muslim de Pêxemberê Xwedê (s.) gelek caran digot: "Ey Xwedayê min! Ez te tenzîh dikim/tu ji hemû tiştên noqsanî beriyî, ez meşxûlê bi hemdê te me, ez tobe dikim li bal wî ve. ‘Aîşe got: Min got: Ey Resûlê Xwedê ez dibînim tu gelek van kelîmana dibêjî: "Ey Xwedayê min! Ez te tenzîh dikim/tu ji hemû tiştên noqsanî beriyî, ez meşxûlê bi hemdê te me, ez tobe dikim li bal wî ve." Got: "Rebbê min îxbar min kiriye ezê hê ‘elametekê/nîşanekê di ummeta xwe de bibînim, vêca zemanê min dît ezê gelek van kelîmana: "Ey Xwedayê min! Ez te tenzîh dikim/tu ji hemû tiştên noqsanî beriyî, ez meşxûlê bi hemdê te me, ez tobe dikim li bal wî ve" bibêjim eva min ew ‘elamet dît. Zemanê Xwedê Resûlê xwe xalib kir û Mekke hate fetihkirin û te dît qebîle qebîle daxilî dînê Îslamê bûn vêca tu tesbîha –tenzîha– rebbê xwe bike û teleba mexfîretê jê bike. Çunkî bêşik û bêguman ew zêde zêde toba gunehkaran qebûl dike.

  

١١٥- عَنْ أَنَسٍ ﵁ قَالَ: إِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ تَابَعَ الْوَحْيَ عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَبْلَ وَفَاتِهِ حَتَّى تُوُفِّيَ أَكْثَرَ مَا كَانَ الْوَحْيُ عَلَيْهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

115- Ji Enes (r.), gotiye: "Xwedê te'ala, zemanê wefata Pêxember (s.) nêzîk bû, wehî li ser hevdu rê kir, heta di peyhevbûna wehyê de wefat kir." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٦- عَنْ جَابِرٍ ﵁ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (يُبْعَثُ كُلُّ عَبْدٍ عَلَى مَا مَاتَ عَلَيْهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

116- Ji Cabir (r.), gotiye: Pêxember (s.) gotiye: "Her 'ebd li ser çi 'emelî bimre dê li ser wî 'emelî jî heşra wî bê kirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابٌ فِي بَيَان كَثْرَة طُرُق الْخَيْرِ

## EŞKEREKIRINA RÊYÊN XÊRÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَمَا تَفْعَلُوا مِنْ خَيْرٍ فَإِنَّ اللَّهَ بِهِ عَلِيمٌ﴾

"Ew tiştên ku hûn ji xêra dikin, Xwedê pê zana ye." [1]

﴿وَمَا تَفْعَلُوا مِنْ خَيْرٍ يَعْلَمْهُ اللَّهُ﴾

"Tişta ku hûn ji xêra dikin, Ellah te'ala pê dizane."[2]

﴿فَمَنْ يَعْمَلْ مِثْقَالَ ذَرَّةٍ خَيْراً يَرَهُ﴾

"Kesê hindî zerrekê xêrê bike ew dê mukafata wê bibîne. [3]

﴿مَنْ عَمِلَ صَالِحًا فَلِنَفْسِهِ﴾

"Her kesê 'emelê baş dike ji bona nefsa xwe dike." [4]

١١٧- عَنْ أَبِي ذَرٍّ جُنْدَبِ بْنِ جُنَادَةَ ﵁ قَالَ: قُلْتُ يَا رَسُولَ اللَّهِ، أَيُّ الأَعْمَالِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: (الإِيمَانُ بِاللَّهِ وَالْجِهَادُ فِي سَبِيلِهِ) قُلْتُ: أَيُّ الرِّقَابِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: (أَنْفَسُهَا عِنْدَ

1 Beqere, 2/215
2 Beqere, 2/197
3 Zîlzal, 99/7
4 Casiye, 45/15

أَهْلِهَا وَأَكْثَرُهَا ثَمَناً) قُلْتُ: فَإِنْ لَمْ أَفْعَلْ؟ قَالَ: (تُعِينُ صَانِعاً أَوْ تَصْنَعُ لأَخْرَقَ) قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، أَرَأَيْتَ إِنْ ضَعُفْتُ عَنْ بَعْضِ الْعَمَلِ؟ قَالَ: (تَكُفُّ شَرَّكَ عَنِ النَّاسِ فَإِنَّهَا صَدَقَةٌ مِنْكَ عَلَى نَفْسِكَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

117- Ji Ebû Zerr Cundeb kurê Cunade (r.), min got: Ya Resûlê Xwedê ji kar û ‘emelan kîjan baştire? Got: “Baweriya bi Xwedê û cîhada di riya wî de ye.” Min got, ji ‘Uebdan –koleyan– kîjan baştir e ku bê azadkirin? Got: “Ewê li cem xwedanê xwe qedirtir e baştir e ku bê azadkirin û yê bihayê wî gelektir be.” Min got: Ger ez nikaribim vî karî bikim? Got: “Arîkariya yê ku îşê xwe dizane bike. Yan jî ewê ku îşê xwe nizane îşê wî bike.” Min got: Ka ji bo min bêje, eger ez ji hindek kar û ‘emelî ze‘îf bûm –min nikarî ku bikim?– Got: “Neqenciyê li tu kesî neke ev jî ji bona te sedeqe ye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٨- عَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (يُصْبِحُ عَلَى كُلِّ سُلَامَىٰ مِنْ أَحَدِكُمْ صَدَقَةٌ، فَكُلُّ تَسْبِيحَةٍ صَدَقَةٌ، وَكُلُّ تَحْمِيدَةٍ صَدَقَةٌ، وَكُلُّ تَهْلِيلَةٍ صَدَقَةٌ، وَكُلُّ تَكْبِيرَةٍ صَدَقَةٌ، وَأَمْرٌ بِالْمَعْرُوفِ صَدَقَةٌ، وَنَهْيٌ عَنِ الْمُنْكَرِ صَدَقَةٌ، وَيُجْزِئُ مِنْ ذَلِكَ رَكْعَتَانِ يَرْكَعُهُمَا مِنَ الضُّحَى). رَوَاهُ مُسْلِم.

118- Dîsa ji Ebû Zerr (r.), bêguman Resûlê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê ji we lê bû sibeh, li ser her movikeke wî sedeqeyek heye: Her tesbîhek (Subhanellah), her tehmîdek (elhemdu lîllah) û her tehlîlek (la îlahe îllellah) sedeqe ye. Emrê bi qenciyê sedeqe ye û men‘a ji xirabiyê sedeqe ye. Lê du rekatên nimêja piştî tavderketinê/nimêja duhayê dikeve ber van hemûyan.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٩- عَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (عُرِضَتْ عَلَيَّ أَعْمَالُ أُمَّتِي حَسَنُهَا وَسَيِّئُهَا فَوَجَدْتُ فِي مَحَاسِنِ أَعْمَالِهَا الأَذَى يُمَاطُ عَنِ الطَّرِيقِ، وَوَجَدْتُ فِي مَسَاوِئِ أَعْمَالِهَا النُّخَاعَةَ تَكُونُ فِي الْمَسْجِدِ لَا تُدْفَنُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

119- Dîsa ji Ebû Zerr (r.) got: Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Kar û ‘emelên ummeta min ên qenc û ên xirab hemû bo min hatin nîşandin. Vêca min

  

dît ku paqijkirina rê ji qenciyan e û tûk û belxemavêtina di mizgeftan de neyê paqijkirin ji xirabiya ne. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢٠- عَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ أَنَّ نَاساً قَالُوا: يا رَسُولَ اللَّهِ ذَهَبَ أَهْلُ الدُّثُورِ بِالْأُجُورِ، يُصَلُّونَ كَمَا نُصَلِّي، وَيَصُومُونَ كَمَا نَصُومُ وَيَتَصَدَّقُونَ بِفُضُولِ أَمْوَالِهِمْ، قَالَ: (أَوَ لَيْسَ قَدْ جَعَلَ اللَّهُ لَكُمْ مَا تَصَّدَّقُونَ بِهِ إِنَّ بِكُلِّ تَسْبِيحَةٍ صَدَقَةً، وَكُلِّ تَكْبِيرَةٍ صَدَقَةً، وَكُلِّ تَحْمِيدَةٍ صَدَقَةً، وَكُلِّ تَهْلِيلَةٍ صَدَقَةً، وَأَمْرٌ بِالْمَعْرُوفِ صَدَقَةٌ، وَنَهْيٌ عَنْ مُنْكَرٍ صَدَقَةٌ، وَفِي بُضْعِ أَحَدِكُمْ صَدَقَةٌ) قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَيَأْتِي أَحَدُنَا شَهْوَتَهُ وَيَكُونُ لَهُ فِيهَا أَجْرٍ؟ قَالَ: (أَرَأَيْتُمْ لَوْ وَضَعَهَا فِي حَرَامٍ أَكَانَ عَلَيْهِ وِزْرٌ؟ فَكَذَلِكَ إِذَا وَضَعَهَا فِي الْحَلَالِ كَانَ لَهُ أَجْرٌ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

120- Dîsa ji Ebû Zerr (r.), hindek însanan gotin: Ya Resûlê Xwedê maldar –dewlemend– bi xêr û sedeqan ji me derbas bûne. Ew jî wekî me nimêj dikin û wekî me rojî digrin û hindek ji malê xwe dikine sedeqe. Resûlê Xwedê got: “Ma ew tişta hûn bikine sedeqe Xwedê te‘ala nedaye we? Her “Tesbîhek” sedeqe ye, her “Tekbîrek” sedeqe ye, her “Tehmîdek” sedeqe ye, her “Tehlîlek” sedeqe ye “Emrê bi me‘rûfî” (wesiyetkirina tiştê baş.) “Nehya ji munkerî (Meni‘krina tiştê xerab) her du jî sedeqe ne. Bihevrebûna yekî ji we bi pîreka xwe re ji sedeqe ye.” Gotin ya Resûlê Xwedê ma di pêkanîna şehwetê de jî me re xêr heye? Got: “Ka ji min re bêjin, eger yek şehweta xwe di heramiyê de dayne guneh dikeve ser wî?” Belê. “Wekî vî jî zemanê yekî şehweta xwe di helaliyê de ‘emiland ji wî re xêr heye.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢١- عَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ قَالَ: قَالَ لِيَ النَّبِيُّ ﷺ: (لَا تَحْقِرَنَّ مِنَ الْمَعْرُوفِ شَيْئاً وَلَوْ أَنْ تَلْقَى أَخَاكَ بِوَجْهٍ طَلْقٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

121- Ji Ebû Zerr (r.) got: Nebiyê Xwedê (s.) gote min: “Tu tiştê baş biçûk nebîne çendan tu bi rûyek vekirî rastî birayê xwe bibî.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (كُلُّ سُلَامَىٰ مِنَ النَّاسِ عَلَيْهِ صَدَقَةٌ

كُلَّ يَوْمٍ تَطْلُعُ فِيهِ الشَّمْسُ، تَعْدِلُ بَيْنَ الإثْنَيْنِ صَدَقَةٌ، وَتُعِينُ الرَّجُلَ فِي دَابَّتِهِ فَتَحْمِلُهُ عَلَيْهَا أَوْ تَرْفَعُ لَهُ عَلَيْهَا مَتَاعَهُ صَدَقَةٌ، وَالْكَلِمَةُ الطَّيِّبَةُ صَدَقَةٌ، وَبِكُلِّ خَطْوَةٍ تَمْشِيهَا إِلَى الصَّلَاةِ صَدَقَةٌ، وَتُمِيطُ الأَذَى عَنِ الطَّرِيقِ صَدَقَةٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَرَوَاهُ مُسْلِمْ أيضاً مِنْ رِوَايَةِ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّهُ خُلِقَ كُلُّ إِنْسَانٍ مِنْ بَنِي آدَمَ عَلَى سِتِّينَ وَثَلَاثِ مِائَةِ مَفْصِلٍ، فَمَنْ كَبَّرَ اللَّهَ وَحَمِدَ اللَّهَ وَهَلَّلَ اللَّهَ، وَسَبَّحَ اللَّهَ وَاسْتَغْفَرَ اللَّهَ وَعَزَلَ حَجَراً عَنْ طَرِيقِ النَّاسِ أَوْ شَوْكَةً أَوْ عَظْماً عَنْ طَرِيقِ النَّاسِ، أَوْ أَمَرَ بِمَعْرُوفٍ أَوْ نَهَى عَنْ مُنْكَرٍ عَدَدَ السِّتِّينَ وَالثَّلَاثِ مِائَةِ، فَإِنَّهُ يمسي يَوْمَئِذٍ وَقَدْ زَحْزَحَ نَفْسَهُ عَنِ النَّارِ).

122- Ji Ebû Hureyre(r.) Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Li ser her movika mirovekî her roj sedeqek heye. Tu di neqeba du mirovan de bi 'edalet hukim bikî sedeqe ye. Tu arîkariya mirovekî bikî, wekî barê wî deynî ser dewara wî û yan jî ji ser dewara wî deynî xwarê sedeqe ye. Peyvek xweş sedeqe ye, bi her gaveke tu tavêjî baskî nimêjê ve sedeqe ye. Tu "stiriyekî" tiştên bi êş ji rê bidî aliyekî sedeqe ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Dîsa Muslim ji rîwayeta 'Aişê (r.) rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê gotiye: "Bêşik ji zaroyên Adem her mirovek li ser sêsed û şêst movikan hatiye afirandin. Her kesê bi jimara wan sêsed û şêst movikan bêje; *ellahu ekber* û *elhemdu lîllah*" û *la îlahe îllellah* û *Subhanellah* û ji Xwedê te'ala daxwaza 'efûkirina xwe bike û kevirekî, yan stiriyekî û yan jî hestiyekî ji rêya însanan bavêje; emrê bi qenciyê bike û men'a xirabiyê bike, bêguman wê rojê lê dibe êvar û xwe ji agir filitandiye."

١٢٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قال: (مَنْ غَدَا إِلَى الْمَسْجِدِ أَوْ رَاحَ أَعَدَّ اللَّهُ لَهُ فِي الْجَنَّةِ نُزُلاً كُلَّمَا غَدَا أَوْ رَاحَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

123- Ji Ebû Hureyre (r.), gotiye: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Her kesê sibehê yan êvarê here mizgefta Xwedê, di her çûyina wî de "ziyafeta wî" ya cennetê jê re hazir dike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

  

١٢٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (يَا نِسَاءَ الْمُسْلِمَاتِ لَا تَحْقِرَنَّ جَارَةٌ لِجَارَتِهَا وَلَوْ فِرْسِنَ شَاةٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

124- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.), gotiye: Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Ey jinên misilman! Bila tu cîranek ji we cîrana xwe bi semekî pezî jî be bê hediye/xelat nehêle." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (الإِيمَانُ بِضْعٌ وَسَبْعُونَ، أَوْ بِضْعٌ وَسِتُّونَ شُعْبَةً فَأَفْضَلُهَا قَوْلُ، لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ، وَأَدْنَاهَا إِمَاطَةُ الأَذَى عَنِ الطَّرِيقِ، وَالْحَيَاءُ شُعْبَةٌ مِنَ الْإِيمَانِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

125- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxember (s.) rîwayet kiriye gotiye: "Îman heftê û çend yan jî şêst û çend behr in; baştira wan, gotina La îlahe îllellah/ji xeyrê zatê Xwedê (c.c.) tu me'bûdê heq tuneye. Kêmtirîna wan paqijkirina rê ji tiştên bi zerar e. Heyakirin jî behrek ji îmanê ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ: (قَالَ بَيْنَمَا رَجُلٌ يَمْشِي بِطَرِيقٍ اِشْتَدَّ عَلَيْهِ الْعَطَشُ، فَوَجَدَ بِئْراً فَنَزَلَ فِيهَا فَشَرِبَ، ثُمَّ خَرَجَ فَإِذَا كَلْبٌ يَلْهَثُ يَأْكُلُ الثَّرَى مِنَ الْعَطَشِ. فَقَالَ الرَّجُلُ: لَقَدْ بَلَغَ هَذَا الْكَلْبَ مِنَ الْعَطَشِ مِثْلُ الَّذِي كَانَ قَدْ بَلَغَ مِنِّي، فَنَزَلَ الْبِئْرَ فَمَلأَ خُفَّهُ مَاءً ثُمَّ أَمْسَكَهُ بِفِيهِ حَتَّى رَقِيَ، فَسَقَى الْكَلْبَ فَشَكَرَ اللَّهُ لَهُ، فَغَفَرَ لَهُ، قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَه وَإِنَّ لَنَا فِي الْبَهَائِمِ أَجْراً؟ فَقَالَ: (فِي كُلِّ كَبِدٍ رَطْبَةٍ أَجْرٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِلْبُخَارِي: فَشَكَرَ الله لَهُ فغفر لَهُ فَأَدْخَلَهُ الْجَنَّةَ.

وَفِي رِوايَةٍ لهما: (بَيْنَمَا كَلْبٌ يُطِيفُ بِرَكِيَّةٍ قَدْ كَادَ يَقْتُلُهُ الْعَطَشُ، إِذْ رَأَتْهُ بَغِيٌّ مِنْ بَغَايَا بَنِي إِسْرَائِيلَ فَنَزَعَتْ مُوقَهَا فَاسْتَقَتْ لَهُ بِهِ فَسَقَتْهُ، فَغُفِرَ لَهَا بِهِ)

126- Dîsa ji Ebû Hureyre(r.) hatiye rîwayetkirin, bêguman Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Di demekê de mirovek di rê de diçû, gelek têhn/tî bûbû, rastî bîrekê hat çû wê bîrê de av vexwar, paşê jî derket, dît ku seyek ji têhna heriyê dixwe. Ewî mirovî ji xwe re got: Sond dixwim bi Xwedê ev seyê

han jî wekî min têhn bûye. Vêca çû kete bîrê pêlava xwe tijî av kir paşê bidevê wê girt û ji bîrê derket û ew se avda. Li ser vî karê wî, Xwedê te'ala ji wî razî bû û ew mirov 'efûkir." Sehabiyan gotin: Ya Resûlê Xwedê! Di derheq heywanan de jî ji bo me xêr heye? Got: "Di derbarê her heywanê xwedankezeb/mêlak de xêr heye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Rîwayetek ya Buxarî de: "Xwedê ji wî razî bû, ew xefirand û çû behiştê."

Rîwayetek dî ya Buxarî û Muslim de: "Wextekî seyek li dora bîrekê dihat û diçû, hindik mabû ku ji têhna hisk bibe. Jineke zinaker ji Benî Îsraîlyan dît ku ew se di wî halî de ye. Rabû şekala xwe ji lingê xwe derxist û pê ew heywan avda. Li ser vî kar û 'emelê wê Xwedê ew 'efû kir."

١٢٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَقَدْ رَأَيْتُ رَجُلاً يَتَقَلَّبُ فِي الْجَنَّةِ فِي شَجَرَةٍ قَطَعَهَا مِنْ ظَهْرِ الطَّرِيقِ كَانَتْ تُؤْذِي الْمُسْلِمِينَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ:(مَرَّ رَجُلٌ بِغُصْنِ شَجَرَةٍ عَلَى ظَهْرِ طَرِيقٍ فَقَالَ وَاللَّهِ لأُنَحِّيَنَّ هَذَا عَنِ الْمُسْلِمِينَ لَا يُؤْذِيهِمْ، فَأُدْخِلَ الْجَنَّةَ)

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُمَا: (بَيْنَمَا رَجُلٌ يَمْشِي بِطَرِيقٍ وَجَدَ غُصْنَ شَوْكٍ عَلَى الطَّرِيقِ فَأَخَّرَهُ فَشَكَرَ اللَّهُ لَهُ فَغَفَرَ لَهُ)

127- Ji Ebî Hureyre(r.) hatiye rîwayetkirin, Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Sond dixwim bi Xwedê te'ala: Min mirovek dît di behiştê de xwe werdi-gerand –kêf dikir– ji bo ku darek li devê rê de hebû misilman pê nerehet dibûn ewî ew dar ji devê rê biribû ku misilman pê eziyetê nekişînin. Vêca Xwedê xefirand û çû cennetê."

Di rîwayetekê de: Mirovek ji ber çiqilek darê re bihûrî ku ketibû ser devê rê got: Wellahî ezê vî çiqilî rakim da ku misilman eziyet nebînin. Vêca li ser vê yekê Xwedê ew 'efû kir çû biheştê."

Di rîwayetek dî ya Buxarî û Muslim de: "Di zemanekî de mirovek di rê de diçû, dît ku çiqilekê darekê rê girtiye, rabû ew ji wê rêyê avêt, Xwedê ji wî razî bû û ew 'efû kir."

١٢٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ تَوَضَّأَ فَأَحْسَنَ الْوُضُوءَ ثُمَّ أَتَى الْجُمُعَةَ فَاسْتَمَعَ وَأَنْصَتَ، غُفِرَ لَهُ مَا بَيْنَهُ وَبَيْنَ الْجُمُعَةِ وَزِيَادَةُ ثَلَاثَةِ أَيَّامٍ وَمَنْ مَسَّ

الْحَصَى فَقَدْ لَغَا) رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

128- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Her kesê destnimêj bigre û baş destnimêj bigre –ferz û sunnetên wê xweşik pek bîne– paşê jî (ji bo edakirina nimêja înê) were mizgeftê, vêca guhê xwe bide (xutbê) û sukutê bike Xwedê te'ala gunehên wî yên neqeba her du înan de kiriye dixefirîne û sê rojan jî lê zêde. Kesê bi keviroka bileyîze (yan tiştek dîtir) xêra xwe winda dike." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا تَوَضَّأَ الْعَبْدُ الْمُسْلِمُ أَوِ الْمُؤْمِنُ فَغَسَلَ وَجْهَهُ خَرَجَ مِنْ وَجْهِهِ كُلُّ خَطِيئَةٍ نَظَرَ إِلَيْهَا بِعَيْنَيْهِ مَعَ الْمَاءِ أَوْ مَعَ آخِرِ قَطْرِ الْمَاءِ، فَإِذَا غَسَلَ يَدَيْهِ خَرَجَ مِنْ يَدَيْهِ كُلُّ خَطِيئَةٍ كَانَ بَطَشَتْهَا يَدَاهُ مَعَ الْمَاءِ، أَوْ مَعَ آخِرِ قَطْرِ الْمَاءِ، فَإِذَا غَسَلَ رِجْلَيْهِ خَرَجَتْ كُلُّ خَطِيئَةٍ مَشَتْهَا رِجْلَاهُ مَعَ الْمَاءِ، أَوْ مَعَ آخِرِ قَطْرِ الْمَاءِ حَتَّى يَخْرُجَ نَقِيّاً مِنَ الذُّنُوبِ) رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

129- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Zemanê 'ebdê misilman û yan jî 'ebdê mumin destnimêj girt, dema rûyê xwe şûşt, çiqas i qeder gunehên ku wî bi çavên xwe kiribin, bi wê avê re û yan jî bi dûmahiya peşka ava ku ji rûyê wî dikeve re ji rûyê wî derdikevin. Zemanê destên xwe şûşt, hemû gunehên ku wî bi destên xwe kiriye ji destên wî derdikevin digel avê û yan jî digel peşka avê ya paşê, heya ji gunehan paqij dibe. Wextê ku lingên xwe şûşt dîsa ji lingên wî derdikevin temamê gunehên ku wî bi lingên xwe kiriye digel avê û yan digel peşka avê ya paşê, ta ji gunehan paqij bibe." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (الصَّلَوَاتُ الْخَمْسُ، وَالْجُمُعَةُ إِلَى الْجُمُعَةِ، وَرَمَضَانُ إِلَى رَمَضَانَ مُكَفِّرَاتٌ لِمَا بَيْنَهُنَّ إِذَا اجْتُنِبَتِ الْكَبَائِرُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

130- Ji Ebû Hureyre (r.), Resûlê Ekrem (s.) gotiye: "Her pênc nimêj, ji înê heta înê, ji meha Remezanê heta meha Remezanê dibin kefaretê wan gunehên ku di neqeba wan de hatine kirin, bi wî şertî ku gunehên mezin nehatibin kirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَلَا أَدُلُّكُمْ عَلَى مَا يَمْحُو اللَّهُ بِهِ الْخَطَايَا وَيَرْفَعُ بِهِ الدَّرَجَاتِ؟ قَالُوا: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: إِسْبَاغُ الْوُضُوءِ عَلَى الْمَكَارِهِ، وَكَثْرَةُ الْخُطَا إِلَى الْمَسَاجِدِ، وَانْتِظَارُ الصَّلَاةِ بَعْدَ الصَّلَاةِ، فَذَلِكُمُ الرِّبَاطُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

31- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ma hûn dixwazin ku ez ew tiştên ku Xwedê bi wan gunehan 'efû dike û derecan bi bilind dike nîşanî we bidim? Gotin: Belê ya Resûlê Xwedê. Got: Digel zehmetiyê temamkirina destnimêjgirtinê, avêtina gavên zahf bi bal mizgeftan ve, hêviya kirina nimejekê piştî kirina nimêjekê. Cîhad eva ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٢- عَنْ أَبِي مُوسَى الْأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ صَلَّى الْبَرْدَيْنِ دَخَلَ الْجَنَّةَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

132- Ji Ebû Mûsa yê Eş'arî (r.), Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Her kesê her du nimêjên hênkayiyê (nimêja sibehê û esrê) bike ew dê here behiştê." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٣٣- عَنْ أَبِي مُوسَى الْأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا مَرِضَ الْعَبْدُ أَوْ سَافَرَ كُتِبَ لَهُ مِثْلُ مَا كَانَ يَعْمَلُ مُقِيماً صَحِيحاً). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

133- Dîsa ji Ebû Mûsa yê Eş'arî (r.), Resûlê Ekrem (s.) gotiye: "Zemanê 'ebdê Xwedê nexweş ket û yan jî çû seferê, jê re xêra wan 'emelên ku wextê li mal yan ne nexweş dikir tê nivîsandin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٣٤- عَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (كُلُّ مَعْرُوفٍ صَدَقَةٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

134- Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin, Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Her tiştê çak û baş sedeqe ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٥- عَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا مِنْ مُسْلِمٍ يَغْرِسُ غَرْسًا إِلَّا كَانَ مَا أُكِلَ مِنْهُ لَهُ صَدَقَةً، وَمَا سُرِقَ مِنْهُ لَهُ صَدَقَةً، وَلَا يَرْزَؤُهُ أَحَدٌ إِلَّا كَانَ لَهُ صَدَقَةً). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: (فَلَا يَغْرِسُ الْمُسْلِمُ غَرْساً، فَيَأْكُلَ مِنْهُ إِنْسَانٌ وَلَا دَابَّةٌ وَلَا طَيْرٌ إِلَّا كَانَ

لَهُ صَدَقَةً إِلَى يَوْمِ الْقِيَامَةِ).

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: (لَا يَغْرِسُ مُسْلِمٌ غَرْساً، وَلَا يَزْرَعُ زَرْعاً فَيَأْكُلَ مِنْهُ إِنْسَانٌ وَلَا دَابَّةٌ وَلَا شَيْءٌ إِلَّا كَانَتْ لَهُ صَدَقَةٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم، مِنْ رِوَايَةِ أَنَس.

135- Dîsa ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin, Resûlê Xwedê (s.) gotiye: “Kîjan misilmanê ku darekê biçîne, tişta jê were xwarin, û yan jê were dizîn, an jî jê were kêmkirin jê re sedeqe ye.” *Muslim rîwayet kiriye.*

Di rîwayeta dî ya Muslim de: “Çi misilmanê darekê biçîne vêca însan jê bixwin, heywan jê bixwin, teyr jê bixwin ji wî re dibe sedeqe heta roja qiyametê.”

Di rîwayetek dî ya Muslim de: “Çi misilmanek darekê biçîne yan jî erdekî bikele/bireşîne vêca însan û heywan û çi tişt jê bixwin, ew ji wî re dibe sedeqe.” *Buxarî û Muslim ji Enes rîwayet kirine.*

١٣٦- عَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: أَرَادَ بَنُو سَلِمَةَ أَنْ يَنْتَقِلُوا قُرْبَ الْمَسْجِدِ، فَبَلَغَ ذلِكَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ لَهُمْ: (إِنَّهُ قَدْ بَلَغَنِي أَنَّكُمْ تُرِيدُونَ أَنْ تَنْتَقِلُوا قُرْبَ الْمَسْجِدِ؟) فَقَالُوا: نَعَمْ يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَدْ أَرَدْنَا ذلِكَ، فَقَالَ: (بَنِي سَلِمَةَ: دِيَارَكُمْ تُكْتَبْ آثَارُكُمْ، دِيَارَكُمْ تُكْتَبْ آثَارُكُمْ). رَوَاهُ مُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: (إِنَّ بِكُلِّ خُطْوَةٍ دَرَجَةً). رَوَاهُ الْبُخَارِي بِمَعْنَاهُ مِنْ رِوَايَةِ أَنَس ﷺ

136- Dîsa ji Cabir(r.) hatiye rîwayetkirin got: Benî Selîmiyan xwestin ku werine nêzîkî mizgeftê –camiyê– Resûlê Xwedê pê xeberdar bû, gote wan: “Ez agahdar bûme hûn dixwazin werin nêzîkî mizgeftê.” Gotin: Belê ya Resûlê Xwedê: Got: “Ey Benî Selîmiyan! Hûn di ciyê xwe de rawestin da ku ji bo we bi gavên we sewab bê nivîsandin.” *Muslim rîwayet kiriye.*

Di rîwayetek dî de: “Bêguman bi her gavekî ku hûn bavêjin ji we re derecek heye.”

Bi vê maneyê Buxarî ji Enes (r.) rîwayet kiriye.

١٣٧- عَنْ أَبِي الْمُنْذِرِ أُبَيِّ بْنِ كَعْبٍ ﷺ قَالَ: كَانَ رَجُلٌ، لَا أَعْلَمُ رَجُلاً أَبْعَدَ مِنَ الْمَسْجِدِ مِنْهُ، لَا تُخْطِئُهُ صَلَاةٌ، فَقِيلَ لَهُ، أَوْ قُلْتُ لَهُ: لَوِ اشْتَرَيْتَ حِمَاراً تَرْكَبُهُ فِي الظَّلْمَاءِ وَفِي

الرَّمْضَاءِ؟ قَالَ: مَا يَسُرُّنِي أَنَّ مَنْزِلِي إِلَى جَنْبِ الْمَسْجِدِ، إِنِّي أُرِيدُ أَنْ يُكْتَبَ لِي أَجر مَمْشَايَ إِلَى الْمَسْجِدِ وَرُجُوعِي إِذَا رَجَعْتُ إِلَى أَهْلِي، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (قَدْ جَمَعَ اللَّهُ لَكَ ذَلِكَ كُلَّهُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: (إِنَّ لَكَ مَا احْتَسَبْتَ).

137- Ji Ebû Munzir Ubey kurê Ke'b (r.) got: Mirovek hebû mala tu kesî wekî mala wî ji mizgeftê dûr nebû. Vêca nimêja wî bêcima'eta li mizgeftê li wî derbas nedibûn. Ji wî re hate gotin û yan min jê re got: Ma tu ji xwe re kerekî bikirî û di şevên tarî de û yan di germê de pê biçî mizgeftê baştir nedibû? Got: Min kêfxweş nake ku mala min li kêleka mizgeftê be, ez dixwazim bi hatin û çûyina mina bi bal camiyê ve ji bo min xêr bêne nivîsîn. Pêxemberê Xwedê (s.) gotiyê: "Xwedê te'ala ew hemû ji bo te kom kirine." *Muslim rîwayet kiriye.*

Di rîwayetek dî de: "Bêşik ji te re tişta ku te hêvî kiriye heye."

١٣٨- عن أَبِي مُحَمَّد عَبْدَ اللَّهِ بْنَ عَمْرِو بن العَاص ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَرْبَعُونَ خَصْلَةً أَعْلَاهُنَّ مَنِيحَةُ الْعَنْزِ، مَا مِنْ عَامِلٍ يَعْمَلُ بِخَصْلَةٍ مِنْهَا رَجَاءَ ثَوَابِهَا وَتَصْدِيقَ مَوْعُودِهَا إِلَّا أَدْخَلَهُ اللَّهُ بِهَا الْجَنَّةَ). رَوَاهُ البُخَارِي.

138- Ji Ebû Muhemmed 'Ebdullah kurê 'Emir kurê 'As (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Çil xeslet –tiştên baş– hene mezintirîna wan ew e ku bizina doşaniyê seba bidoşin emanetî bide. Kîjan mirovê ku bi hêviya xêra wê û bi baweriya we'da wê, yekî ji wan pêk bîne wê Xwedê te'ala wî kesî daxilî behiştê bike." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٣٩- عَنْ عَدِيِّ بْنِ حَاتِمٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: (اتَّقُوا النَّارَ وَلَوْ بِشِقِّ تَمْرَةٍ).

رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُمَا: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (مَا مِنْكُمْ مِنْ أَحَدٍ إِلَّا سَيُكَلِّمُهُ اللَّهُ لَيْسَ بَيْنَهُ وَبَيْنَهُ تُرْجُمَانٌ فَيَنْظُرُ أَيْمَنَ مِنْهُ فَلَا يَرَى إِلَّا مَا قَدَّمَ، وَيَنْظُرُ أَشْأَمَ مِنْهُ فَلَا يَرَى إِلَّا مَا قَدَّمَ،

  

وَيَنْظُرُ بَيْنَ يَدَيْهِ فَلَا يَرَى إِلَّا النَّارَ تِلْقَاءَ وَجْهِهِ، فَاتَّقُوا النَّارَ وَلَوْ بِشِقِّ تَمْرَةٍ، فَمَنْ لَمْ يَجِدْ فَبِكَلِمَةٍ طَيِّبَةٍ)

139- Ji ‘Edî kurê Hatem (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst digot: “Xwe ji êgir biparêzin çendan bi nîv xurmekê jê be.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Rîwayetek dî ya di Muslim û Buxarî de dîsa ji ‘Edî, Resûlê Ekrem (s.) gotiye: “Bêguman wê Xwedê bi her yekî ji we re bê tercuman biaxive. Vêca ew dê li aliyê xwe yê rastê binêre ji bilî ‘emelê xwe tiştekî dîtir nabîne, wê li aliyê xwe yê çepê binêre dîsa ji bilî ‘emelê xwe tiştekî dîtir nabîne, wê li pêşiya xwe binêre di pêşberê xwe de ji xeynê êgir çi tiştî nabîne. Vêca ji êgir xwe biparêzin, çendan bi qetek xurme be. Her kesê ew jî peyda nekir bila bi gotinek xweş xwe biparêze.”

١٤٠- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ اللَّهَ لَيَرْضَى عَنِ الْعَبْدِ أَنْ يَأْكُلَ الأَكْلَةَ فَيَحْمَدَهُ عَلَيْهَا أَوْ يَشْرَبَ الشَّرْبَةَ فَيَحْمَدَهُ عَلَيْهَا). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

140-Ji Enes kurê Malik (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Bêguman Xweda, ji wî Uebdî razî dibe ku xwarinê dixwe hemdê li ser dike û yan vexwarinê vedixwe hemdê li ser dike.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤١- عَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (عَلَى كُلِّ مُسْلِمٍ صَدَقَةٌ) قَالَ: أَرَأَيْتَ إِنْ لَمْ يَجِدْ؟ قَالَ: (يَعْمَلُ بِيَدِيهِ فَيَنْفَعُ نَفْسَهُ وَيَتَصَدَّقُ) قَالَ أَرَأَيْتَ إِنْ لَمْ يَسْتَطِعْ؟ قَالَ: (يُعِينُ ذَا الْحَاجَةِ الْمَلْهُوفَ) قَالَ أَرَأَيْتَ إِنْ لَمْ يَسْتَطِعْ؟ قَالَ: (يَأْمُرُ بِالْمَعْرُوفِ أَوِ الْخَيْرِ) قَالَ أَرَأَيْتَ إِنْ لَمْ يَفْعَلْ؟ قال: (يُمْسِكُ عَنِ الشَّرِّ فَإِنَّهَا صَدَقَةٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

141- Ji Ebû Mûsa (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Li ser her misilmanekî sedeqe heye. Rawiyê hedîsê got: Lê eger peyda nekir? Got: Bila bi destê xwe kar bike faydê bide xwe û sedeqê jî bike. Rawî got: Eger nekarî bixebite? Got: Bila arîkariya wanê hewcedar bike. Eger ew jî nekarî bike? Bila emrê bi qenciyê an xêrê bike. Lê eger ewê jî nekarî? Bila xwe ji nebaşiyê biparêze. Ew jî sedeqe ye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابٌ فِي الإقْتِصَادِ فِي الطَّاعَةِ
## ÎQTISADA/Î'TIDALA TA'ETÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿طه مَا أَنْزَلْنَا عَلَيْكَ الْقُرْآنَ لِتَشْقَى﴾

"Ta Ha, (Ey Muhemmed) me li ser te Qur'an nazil nekiriye ku tu zehmetiyê bikşînî."[1]

﴿يُرِيدُ اللَّهُ بِكُمُ الْيُسْرَ وَلَا يُرِيدُ بِكُمُ الْعُسْرَ﴾

"Xwedê ji we re hêsaniyê dixwaze, zehmetiyê naxwaze."[2]

١٤٢- عَنْ عَائِشَةَ ﵂ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ دَخَلَ عَلَيْهَا وَعِنْدَهَا إِمْرَأَةٌ قَالَ: (مَنْ هَذِهِ) قَالَتْ: فُلَانَةُ تَذْكُرُ مِنْ صَلَاتِهَا قَالَ: (مَهْ عَلَيْكُمْ بِمَا تُطِيقُونَ، فَوَاللَّهِ لَا يَمَلُّ اللَّهُ حَتَّى تَمَلُّوا وَكَانَ أَحَبَّ الدِّينِ إِلَيْهِ مَادَامَ عَلَيْهِ صَاحِبُهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

142- Ji 'Aîşe (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) hate cem wê û pîrekek li cem wê rûniştî bû; Pêxamber (s.) got: Ev jinika han kî ye? Min got: Filan jinik e behsa nimêja xwe dike –gelek ta'et dike– got: "Dev jê berdin! Zêdeyî qeweta xwe îbadet nekin. Sond dixwim bi Xwedê, heta hûn bê zar nebin Xwedê bê zar nabe, (heta hûn terka îbadetê nekin Xwedê jî terka sewabê nake.) Li cem Xwedê te'ala baştirînê îbadetê ew e ku bi dewamî be." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٤٣- عَنْ أَنَسٍ ﵁ قَالَ: جَاءَ ثَلَاثَةُ رَهْطٍ إِلَى بُيُوتِ أَزْوَاجِ النَّبِيِّ ﷺ يَسْأَلُونَ عَنْ عِبَادَةِ النَّبِيِّ ﷺ فَلَمَّا أُخْبِرُوا كَأَنَّهُمْ تَقَالُّوهَا فَقَالُوا: أَيْنَ نَحْنُ مِنَ النَّبِيِّ ﷺ قَدْ غُفِرَ لَهُ مَا تَقَدَّمَ مِنْ ذَنْبِهِ وَمَا تَأَخَّرَ، قَالَ أَحَدُهُمْ: أَمَّا أَنَا فَإِنِّي أُصَلِّي اللَّيْلَ أَبَداً، وَقَالَ آخَرُ: وَأَنَا أَصُومُ الدَّهْرَ أَبَداً وَلَا أُفْطِرُ، وَقَالَ آخَرُ: وَأَنَا أَعْتَزِلُ النِّسَاءَ فَلَا أَتَزَوَّجُ أَبَداً، فَجَاءَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِلَيْهِمْ، فَقَالَ: (أَنْتُمُ الَّذِينَ قُلْتُمْ كَذَا وَكَذَا، أَمَا وَاللَّهِ إِنِّي لَأَخْشَاكُمْ لِلَّهِ وَأَتْقَاكُمْ لَهُ، لَكِنِّي أَصُومُ

1 Taha, 20/1, 2.
2 Beqere, 2/185.

  

وَأُفْطِرُ، وَأُصَلِّي وَأَرْقُدُ، وَأَتَزَوَّجُ النِّسَاءَ فَمَنْ رَغِبَ عَنْ سُنَّتِي فَلَيْسَ مِنِّي). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم

143- Ji Enes (r.), dibêje: Sê mirov çûn mala jinên Pêxemberê Xwedê (s.) pirsiyara îbadetê Resûlê Xwedê dikirin. Wextê ku ji wan re hate gotin, wan ta'etê Pêxember kêm dîtin û gotin, em li ku ne Resûlê Xwedê li ku ye. Xweda, gunehên wî yên pêşîn û paşîn 'efû kirine. Yekî ji wan got: Heçî ku ez im, dê bi şev dewamî nimêj bikim. Yekî dî got: Ezê bi dewamî rojî bigirim û tu caran terk nakim. Yê dîtir got: Heta ku sax bim nazewicim û xwe nêzîkî pîrekan nakim. Vêca Resûlê Ekrem (s.) hate cem wan û got: "Gelo hûn in yên ku wiha wiha gotine? Hişyar bin! Qesem dikim bi Xwedê ez ji we bêhtir ji Xwedê ditirsim û ji we zahftir xwe ji gunehkariyê diparêzim. Lêbelê ez rojî digrim û difitirim, ez nimêj dikim û dirazêm û ez dizewicim. Her kesê ji rêya min derkeve, ew ne ji min e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٤٤- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (هَلَكَ الْمُتَنَطِّعُونَ) قَالَهَا ثَلَاثاً. رَوَاهُ مُسْلِم.

144- Ji 'Ebdullah kurê Mes'ûd (r.), bêşik Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Ewên ku ne di ciyê xwe de xwe bi dîn ve dişidînin, helak bûne. 'Ev gotin sê caran dubare kir." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ الدِّينَ يُسْرٌ، وَلَنْ يُشَادَّ الدِّينَ إِلَّا غَلَبَهُ، فَسَدِّدُوا وَقَارِبُوا وَأَبْشِرُوا، وَاسْتَعِينُوا بِالْغَدْوَةِ وَالرَّوْحَةِ وَشَيْءٍ مِنَ الدُّلْجَةِ). رَوَاهُ البُخَارِي.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: (سَدِّدُوا وَقَارِبُوا واغدُوا وروحُوا وَشَيءٌ مِنَ الدُّلْجَةِ، الْقَصْدَ الْقَصْدَ تَبْلُغُوا)

145-Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Dînê Îslamê sanah e –rehet e– kesê ku zorahiyê li dîn bike, bêşik dê dîn wî kesî mexlûb bike –wê sist bibe û wê ta'etê bihêle– Vêca hûn rêya weset bigirin, xwe dûr nekin, hûn kêfxweş bin û hinekî ji danê sibehî û hinekî ji danê êvarî û hinekî ji şevê ji bona îbadetkirinê veqetînin. Wê ji we re hêsanîtir be." *Buxarî rîwayet kiriye.*

Di rîwayetek dî ya Buxarî de: "Di îbadetê de rêya navîn bigirin. "Hûn neşên bêkêmahî îbadet bikin." –'Emel û îbadetê xwe nêzîkî kemalê bikin– Sibehê û êvarê û qismekî jî ji şevê de bixebitin, rêya nêvî bigrin, rêya nêvî bigrin hûn dê bigihêjine armanca xwe."

١٤٦- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: دَخَلَ النَّبِيُّ ﷺ الْمَسْجِدَ فَرَأَى حَبْلاً مَمْدُودًا بَيْنَ سَارِيَتَيْنِ،

فَقَالَ: (مَا هَذَا الْحَبْلُ) قَالُوا: لِزَيْنَبَ، تُصَلِّي فِيهِ فَإِذَا فَتَرَتْ تَعَلَّقَتْ بِهِ، فَقَالَ: (حُلُّوهُ لِيُصَلِّ أَحَدُكُمْ نَشَاطَهُ، فَإِذَا فَتَرَ فَلْيَرْقُدْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

146- Ji Enes (r.), got Pêxemberê Xwedê (s.) hate mizgeftê dît ku werîsek di neqeba du stûnan de hatiye kişandin, got: "Ev çi ye? Gotin: Ew werîsê Zeynebê ye, wextê ji îbadetê diweste xwe biwî werîsî digîre. Resûlê Xwedê (s.) got: "Wî werîsî vekin bila yek ji we di zemanê nişata xwe de –rehetiya xwe de– ta'et bike. Dema ku xewa wî hat bila razê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٤٧- عَنْ عَائِشَةَ ﵂ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا نَعَسَ أَحَدُكُمْ وَهُوَ يُصَلِّي فَلْيَرْقُدْ حَتَّى يَذْهَبَ عَنْهُ النَّوْمُ، فَإِنَّهُ إِذَا صَلَّى وَهُوَ نَاعِسٌ لَا يَدْرِي لَعَلَّهُ يَسْتَغْفِرُ فَيَسُبُّ نَفْسَهُ).

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

147- Ji 'Aîşe (r.) bêşik Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê yek ji we di nava nimêjê de ponijî bila razê heta ku têrxew bû. Lewra wexta ku çavbixew nimêj bike mimkûn e ku şûna daxwaza 'efûkirina gunehê xwe bike, nifiran li xwe bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٤٨- عَنْ أَبِي عَبْدِ اللَّهِ جَابِرِ بْنِ سَمُرَةَ ﵁ قَالَ: (كُنْتُ أُصَلِّي مَعَ النَّبِيِّ ﷺ فَكَانَتْ صَلَاتُهُ قَصْداً وَخُطْبَتُهُ قَصْداً). رَوَاهُ مُسْلِم.

148- Ji Ebû 'Ebdullah Cabirê kurê Semure (r.), Got: Min digel Resûlê Xwedê nimêj dikir. Vêca nimêja wî mu'tedil bû û xutba wî jî mu'tedil bû (ne kurt bû ne dirêj)." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٩- عَنْ أَبِي جُحَيْفَةَ وَهْبِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﵁ قَالَ: آخَى النَّبِيُّ ﷺ بَيْنَ سَلْمَانَ وَأَبِي الدَّرْدَاءِ، فَزَارَ سَلْمَانُ أَبَا الدَّرْدَاءِ، فَرَأَى أُمَّ الدَّرْدَاءِ مُتَبَذِّلَةً، فَقَالَ لَهَا: مَا شَأْنُكِ؟ قَالَتْ: أَخُوكَ أَبُو الدَّرْدَاءِ لَيْسَ لَهُ حَاجَةٌ فِي الدُّنْيَا، فَجَاءَ أَبُو الدَّرْدَاءِ فَصَنَعَ لَهُ طَعَامًا فَقَالَ لَهُ: كُلْ فَإِنِّي صَائِمٌ، قَالَ مَا أَنَا بِآكِلٍ حَتَّى تَأْكُلَ، فَأَكَلَ فَلَمَّا كَانَ اللَّيْلُ ذَهَبَ أَبُو الدَّرْدَاءِ يَقُومُ فَقَالَ نَمْ فَنَامَ، ثُمَّ ذَهَبَ يَقُومُ فَقَالَ نَمْ، فَلَمَّا كَانَ آخِرُ اللَّيْلِ قَالَ سَلْمَانُ: قُمِ الْآنَ، فَصَلَّيَا فَقَالَ لَهُ سَلْمَانُ: إِنَّ لِرَبِّكَ عَلَيْكَ حَقّاً وَلِنَفْسِكَ عَلَيْكَ حَقّاً، وَلِأَهْلِكَ عَلَيْكَ، حَقّاً فَأَعْطِ كُلَّ

  

ذِي حَقٍّ حَقَّهُ، فَأَتَى النَّبِيَّ ﷺ فَذَكَرَ ذَلِكَ، لَهُ فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (صَدَقَ سَلْمَانُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

149- Ji Ebû Cuheyfe Wehb kurê 'Ebdullah (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) Selmanê Farisî û Ebû Derda bi hevdu re kirin bira; vêca Selman Ebû Derda ziyaret kir dît ku (pîreka wî) Ummu Derda di nav cilên kevin de ye. Selman got: Rewşa te çawa ye? Ummu Derdayê got: Birayê te Ebû Derda 'elaqa wî digel dunyayê çunîne, bes bi îbadetî ve mijûl e. Vêca ji bo Selman re xwarin hazir kir. Ebû Derda ji Selman re got tu kerem ke bixwe ez bi xwe ne birçîme. Selman got: Heta tu nexwî ez jî naxwim. Ewî jî xwar. Wextê bû şev Ebû Derda rabû da ku nimêj bike. Selman got: Razê. Ew jî raza. Paşê çû da ku nimêj bike. Selman jê re got: Tu razê, ew jî raza. Zemanê bû wextê dawiya şevê, Selman got: Niha tu rabe. Ebû Derda rabû hevdu re nimêj kirin. Selman got: Ey birayê Ebû Derda! Bêşik li ser te heqê Rebbê te heye û li ser te heqê nefsa te heye û li ser te heqê ehlê te heye. Vêca lazim e tu heqê her xwedanheqî bidî. Vêca Ebû Derda hate cem Pêxemberê Xwedê (s.); ev bûyera xwe û Selman jê re behs/qal kir. Resûlê Xwedê (s.) got: "Selman rast gotiye." *Buxarî riwayet kiriye.*

١٥٠- عَنْ أَبِي مُحَمَّدٍ عَبْدَ اللَّهِ بْنَ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ قَالَ: أُخْبِرَ النَّبِيُّ ﷺ إِنِّي أَقُولُ: وَاللهِ لأَقُومَنَّ اللَّيْلَ وَلأَصُومَنَّ النَّهَارَ مَا عِشْتُ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَنْتَ الَّذِي تَقُولُ ذَلِكَ) فَقُلْتُ لَهُ: قَدْ قُلْتُهُ بِأَبِي أَنْتَ وَأُمِّي يَا رَسُولَ اللَّهِ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (فَإِنَّكَ لَا تَسْتَطِيعُ ذَلِكَ فَصُمْ وَأَفْطِرْ، وَنَمْ وَقُمْ، وَصُمْ مِنَ الشَّهْرِ ثَلاثَةَ أَيَّامٍ، فَإِنَّ الْحَسَنَةَ بِعَشْرِ أَمْثَالِهَا وَذَلِكَ مِثْلُ صِيَامِ الدَّهْرِ) قُلْتُ: فَإِنِّي أُطِيقُ أَفْضَلَ مِنْ ذَلِكَ قَالَ صُمْ يَوْماً وَأَفْطِرْ يَوْمَيْنِ قُلْتُ فَإِنِّي أُطِيقُ أَفْضَلَ مِنْ ذَلِكَ يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: (صُمْ يَوْماً وَأَفْطِرْ يَوْماً وَذَلِكَ صِيَامُ دَاوُدَ ﷺ وَهُوَ أَعْدَلُ الصِّيَامِ) قُلْتُ: فَإِنِّي أُطِيقُ أَفْضَلَ مِنْ ذَلِكَ، قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا أَفْضَلَ مِنْ ذَلِكَ) قَالَ عَبْدُ اللَّهِ بْنُ عَمْرٍو: لأَنْ أَكُونَ قَبِلْتُ الثَّلاثَةَ الأَيَّامَ الَّتِي قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ أَحَبُّ إِلَيَّ مِنْ أَهْلِي وَمَالِي.

وَفِي رِوَايَةٍ: (أَلَمْ أُخْبَرْ أَنَّكَ تَصُومُ النَّهَارَ وَتَقُومُ اللَّيْلَ) فَقُلْتُ: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ،

قَالَ: (فَلَا تَفْعَلْ صُمْ وَأَفْطِرْ، وَقُمْ وَنَمْ، فَإِنَّ لِجَسَدِكَ عَلَيْكَ حَقّاً، وَإِنَّ لِعَيْنِكَ عَلَيْكَ حَقّاً، وَإِنَّ لِزَوْجِكَ عَلَيْكَ حَقّاً، وَإِنَّ لِزَوْرِكَ عَلَيْكَ حَقّاً، وَإِنَّ بِحَسْبِكَ أَنْ تَصُومَ كُلَّ شَهْرٍ ثَلَاثَةَ أَيَّامٍ، فَإِنَّ لَكَ بِكُلِّ حَسَنَةٍ عَشْرَ أَمْثَالِهَا، فَإِنَّ ذَلِكَ صِيَامُ الدَّهْرِ كُلِّهِ) فَشَدَّدْتُ فَشُدِّدَ عَلَيَّ، قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، إِنِّي أَجِدُ قُوَّةً، قَالَ: (فَصُمْ صِيَامَ نَبِيِّ اللَّهِ دَاوُدَ ﷺ وَلَا تَزِدْ عَلَيْهِ) قُلْتُ: وَمَا كَانَ صِيَامُ نَبِيِّ اللَّهِ دَاوُدَ ﷺ قَالَ: (نِصْفَ الدَّهْرِ) فَكَانَ عَبْدُ اللَّهِ يَقُولُ بَعْدَمَا كَبِرَ: يَا لَيْتَنِي قَبِلْتُ رُخْصَةَ النَّبِيِّ ﷺ.

وَفِي رِوَايَةٍ: (أَلَمْ أُخْبَرْ أَنَّكَ تَصُومُ الدَّهْرَ، وَتَقْرَأُ الْقُرْآنَ كُلَّ لَيْلَةٍ؟) فَقُلْتُ: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ، وَلَمْ أُرِدْ بِذلِكَ إِلَّا الْخَيْرَ، قَالَ: (فَصُمْ صَوْمَ نَبِيَّ اللَّهِ دَاوُودَ ﷺ فَإِنَّهُ كَانَ أَعْبَدَ النَّاسِ، وَاقْرَإِ الْقَرْآنَ فِي كُلِّ شَهْرٍ، قُلْتُ: يَا نَبِيَّ اللَّهِ إِنِّى أُطِيقُ اَفْضَلَ مِنْ ذلِكَ، قَالَ: (فَأقْرَأْهُ فِي كُلِّ عِشْرِينَ) قُلْتُ: يَا نَبِيَّ اللَّهِ، إِنِّى أُطِيقُ اَفْضَلَ مِنْ ذلِكَ، قَالَ: (فَأقْرَأْهُ فِي كُلِّ عَشْرٍ) قُلْتُ: يَا نَبِيَّ اللَّهِ إِنِّى أُطِيقُ اَفْضَلَ مِنْ ذلِكَ، قَالَ:(فَاقْرَأْهُ فِي كُلِّ سَبْعٍ، وَلَا تَزِدْ عَلَى ذلِكَ) فَشَدَّدْتُ فَشُدِّدَ عَلَيَّ، وَقَالَ لِيَ النَّبِيُّ ﷺ: (إِنَّكَ لَا تَدْرِى لَعَلَّكَ يَطُولُ بِكَ عُمُرٌ) قَالَ: فَصِرْتُ إِلَى الَّذِى قَالَ لِيَ النَّبِيُّ ﷺ. فَلَمَّا كَبِرْتُ وَدِدْتُ اَنِّى كُنْتُ قَبِلْتُ رُخْصَةَ نَبِيَّ اللَّهِ ﷺ.

وَفِي رِوَايَةٍ: (وَإِنَّ لِوَلَدِكَ عَلَيْكَ حَقّاً) وَفِي رِوَايَةٍ: (لَا صَامَ مَنْ صَامَ الأَبَدِ) قَالَهُ ثَلَاثًا. وَفِي رِوَايَةٍ: (أَحَبُّ الصِّيَامِ إِلَى اللَّهِ تَعَالَى صِيَامِ دَاوُودَ ﷺ وَأَحَبُّ الصَّلَاةِ إِلَى اللَّهِ تَعَالَى صَلَاةِ دَاوُودَ ﷺ كَانَ يَنَامُ نِصْفُ اللَّيْلِ، وَيَقُومُ ثُلُثَهُ وَيَنَامُ سُدُسَهُ، وَكَانَ يَصُومُ يَوْمًا وَيُفْطِرُ يَوْمًا وَلَا يُفِرُّ إِذَا لَاقَى) وَفِي رِوَايَةٍ قَالَ: (أَنْكَحَنِي أَبِي إِمْرَأَةً ذَاتَ حَسَبٍ، وَكَانَ يَتَعَاهَدُ كُنَّتَهُ، أَيْ: إِمْرَأَةَ وَلِدِهِ فَيَسْأَلُهَا عَنْ بَعْلِهَا فَتَقُولُ لَهُ: نَعَمْ الرَّجُلُ مِنْ رَجُلٍ لَمْ يَطَأْ لَنَا فِرَاشاً، وَلَمْ يُفَتِّشْ لَنَا كَنَفاً مُنْذُ أَتَيْنَاهُ، فَلَمَّا طَالَ ذلِكَ عَلَيْهِ ذَكَرَ ذلِكَ لِلنَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ:

  

(اَلْقِنِى بِهِ) فَلَقِيتُهُ بَعْدُ فَقَالَ: (كَيْفَ تَصُومُ) قُلْتُ: كُلَّ يَوْمٍ قَالَ: (وَكَيْفَ تَخْتِمُ) قُلْتُ: كُلَّ لَيْلَةٍ، وَذَكَرَ نَحْوَ مَا سَبَقَ. وَكَانَ يَقْرَأُ عَلَى بَعْضِ أَهْلِهِ السُّبُعَ الَّذِى يَقْرَؤُهُ، يَعْرِضُهُ مِنَ النَّهَارِ لِيَكُونَ أَخَفَّ عَلَيْهِ بِاللَّيْلِ، وَإِذَا أَرَادَ أَن يَتَقَوَّى أَفْطَرَ أَيَّاماً وَأَحْصَى، وَصَامَ مِثْلَهُنَّ، كَرَاهِيَةَ أَنْ يَتْرُكَ شَيْئًا فَارَقَ عَلَيْهِ النَّبِيُّ ﷺ. كُل هَذِهْ الرِّوَايَات صَحِيحَة مُعْظَمهَا فِي الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ، وَقَلِيل مِنْهَا فِي أَحَدهُمَا.

150- Ji Ebû Muhemmed ‘Ebdullah kurê ‘Emir kurê As (r.) gotiye: Resûlê Xwedê (s.) agahdar bû ku ez dibêjim, sond dixwim ku hindî hebim dê bi roj bi rojî bim û bi şev jî bi ta‘et û îbadet bim. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Gelo tu yî ew kesê ku wê gotinê dibêje? Min got: Belê min gotiye. Fedayê te bin bav û dayika min. Got: “Tu nikarî wisa bikî, rojî bigre û bifitire, razê û rabe ta‘et bike, ji her heyvê sê rojan rojî bigire. Çunkî xêrek ji dêl/pêş deh xêran ve ye. Ev jî wekî rojiya temamê temen e.” Min got: Ez dikarim ji wî zêdetir bigirim. Got: “Rojekê rojî bigire û du rojan negire.” Min got ez dikarim hê zedetir bigirim. Got: “Rojekê bigire û rojekê negire, ev rojiya Dawûd (e.) e. Rojiya naveyî jî eva ye.”

Di rîwayetek dî de ew xêrtirînê rojiya ye. Min got: Ez dikarim ji wê zêdetir bikim got: “Ji wê zêdetir tune.” ‘Ebdullah (piştî pîr bû) got: “Heke min ew e her sê rojên ku Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re tewsiye kirin qebûl kiriba wê ji ehlê min û ji malê min hê hezkirîtirba ji min re.”

Di rîwayetek dî de “Ma ez pê xeberdar nebûme ku tu bi şev nimêj dikî û bi roj rojî digrî?” Min got: Belê wilo ye ey Resûlê Xwedê. Got: “Tu wisa neke. Rojiyê bigre bifitire, razê û rabe –nimêj bike– çunkî bêşik heqê bedena te li ser te heye, li ser te heqê çavên te heye, li ser te heqê pîreka te heye û li ser te heqê mêvanê te heye. Besî te ye ku tu ji her mehê sê rojan birojî bî. Çunkî bêguman ji te re her xêrekî bi deh mislê wê heye, ev rojiya bi vî awayî wekî girtina rojiya temamê salê ye.” ‘Ebdullah got: Min rêya zorê girt li ser min giran bû. Min got: Ya Resûlê Xwedê quweta min heye, got: “Wekî Dawûd rojiyê bigre û zêde neke.” Min got: Rojiya Dawûd çilo ye? Got: “Nîvê Salê ye.” Rawî –‘Ebdullah– zemanê ku pîr bû digot, xwezî min ruxseta –şîreta– Resûlê Xwedê (s.) qebûl kiriba.

Di rîwayetek dî de “Qey ez pê agahdar nebûme tu bi dewamî rojî digrî her şev tu Qur’anê dixwînî? Min got: Belê Ey Resûlê Xwedê armanca min ji vî karî ji xeyrê xêrê tiştek dî nîne. Got: “Wekî rojiya nebiyê Xwedê Dawûd

rojî bigre. Çunkî ewî zêde zêde îbadet dikir. Her heyvekê de Qur'anê –xitim bike– bixwîne. Min got: Ey nebiyê Xwedê ez ji wî zêdetir dikarim bikim. Got: "Di her bîst rojan de Qur'anê bixwîne." Min got: Ey Pêxemberê Xwedê ez ji wê zêdetir dikarim bikim. Wî got: "Di her deh rojan de Qur'anê bixwîne –xitim bike–." Min got: Ey Resûlê Xwedê! Ez ji wê zêdetir dikarim bikim. Wî got: "Di her heft rojan de Qur'anê bixwîne. Li ser wê zêde neke." 'Ebdullah got: Min li ser xwe şidand –min rêya giraniyê bijart– vêca li ser min hate şidandin –li ser min giran bû– Pêxemberê Xwedê ji min re got: Tu bêşik nizanî belkî 'Umrê te dirêj bû te nekarî tu pêk bînî." 'Ebdullah got: Ez wekî gotina Pêxember ji min re gotî lê hatim. Wextê ez pîr bûm min daxwaz kir ku min şîreta Pêxemberê Xwedê (s.) qebûl kiribûya.

Di rîwayetek dî de: "Bêguman li ser te heqê piçûkê te heye."

Di rîwayetek dî de: "Her kesê temamê salê bi rojî be ew rojî ne rojî ye." sê caran got.

Di rîwayetek dî de: "Li cem Xwedê baştirînê rojiyê rojiya Dawûd e û efdaltirê nimêjan li cem Xwedê dîsa nimêja Dawûd e. Dawûd (s.) nîvekê şevê diraza, sêyeka şevê îbadet dikir û şeş yeka şevê radiza û rojekê bi rojî bû û rojekê fitar bû û zemanê lîqayê neyarî bibûya nedirevî.

Di rîwayetek dî de 'Ebdullah wiha gotiye: "Bavê min ez bi pîrekek biesl re zewicandim û geh geh dihat pirsiyara mêrê wê jê dikir. Bûka wî jî digot: Xweş mirov e, hindî ez hatim pêl·ciyê me nekiriye û li me negeriyaye. Zemanê ev halê han berdawam kir, bavê min wez'iyet ji Pêxemberê Xwedê re got. Resûlê Xwedê (s.) got: "Lazim e tu min bi wî bidî dîtin." Paşê ez lîqayê Resûlê Xwedê bûm. Bo min got: "Tu çawa rojî digrî?" Min got: Her roj. Got: "Tu çawa Qur'anê xetim dikî?" Min got: Her şev. Resûlê Ekrem (s.) wekî berê îrşada wî kir. 'Ebdullah heft yeka ku dixwend bi roj li cem hindek ji 'eyalê xwe dixwend da ku bi şev li ser wî sivik bibe. Wextê ku bi vî ya be, ser qeweta xwe çend rojan rojî nedigirt û ew roj dijmart dûre wekî wan rojan rojî digirt. Da ku ji soza ku dayê Pêxemberê Xwedê (s.) dernekeve. *Ev rîwayetên han tev jî sehîh in. Gelek ji wan di Buxarî û Muslim de ne. Û hindik ji wan di yekî ji wan de ne.*

١٥١- عَنْ أَبِي رِبعيٍّ حَنْظَلَةَ بْنِ الرُّبَيِّعِ الأَسَيِّدِيِّ الْكَاتب، أَحد مِنْ كُتَّابِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ، قَالَ: لَقِيَنِي أَبُو بَكْرٍ فَقَالَ: كَيْفَ أَنْتَ يَا حَنْظَلَةُ، قَالَ: قُلْتُ نَافَقَ حَنْظَلَةُ، قَالَ: سُبْحَانَ اللَّهِ مَا تَقُولُ؟ قُلْتُ: نَكُونُ عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ يُذَكِّرُنَا بِالنَّارِ وَالْجَنَّةِ حَتَّى كَأَنَّا رَأْيُ عَيْنٍ،

فَإِذَا خَرَجْنَا مِنْ عِنْدِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ عَافَسْنَا الأَزْوَاجَ وَالأَوْلاَدَ وَالضَّيْعَاتِ فَنَسِينَا كَثِيراً، قَالَ أَبُو بَكْرٍ: فَوَاللَّهِ إِنَّا لَنَلْقَى مِثْلَ هَذَا، فَانْطَلَقْتُ أَنَا وَأَبُو بَكْرٍ حَتَّى دَخَلْنَا عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قُلْتُ: نَافَقَ حَنْظَلَةُ يَا رَسُولَ اللَّهِ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (وَمَا ذَاكَ) قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ نَكُونُ عِنْدَكَ تُذَكِّرُنَا بِالنَّارِ وَالْجَنَّةِ حَتَّى كَأَنَّا رَأْيُ عَيْنٍ فَإِذَا خَرَجْنَا مِنْ عِنْدِكَ عَافَسْنَا الأَزْوَاجَ وَالأَوْلاَدَ وَالضَّيْعَاتِ نَسِينَا كَثِيراً، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ إِنْ لَوْ تَدُومُونَ عَلَى مَا تَكُونُونَ عِنْدِي، وَفِي الذِّكْرِ لَصَافَحَتْكُمُ الْمَلاَئِكَةُ عَلَى فُرُشِكُمْ وَفِي طُرُقِكُمْ، وَلَكِنْ يَا حَنْظَلَةُ سَاعَةً وَسَاعَةً ثَلاَثَ مَرَّاتٍ). رَوَاهُ مُسْلِم.

151- Ji Ebû Rib'î Henzele kurê Rebî'ê Useydê katibek ji katibên Resûlê Xwedê (s.) bû, got: Ebû Bekir (r.) di rê de lîqaê min bû, gote min: Ya Henzele halê te çawa ye? Min got: Henzele bûye munafiq. Wî got: Subhanellah! Tu çi dibêjî? Min got: Zemanê ku em li cem Pêxemberê Xwedê (s.) rûdinin, cennet û ceheneme tîne bîra me, em dikevin di haletekî wisa de her wekî li ber çavên me bin, wextê ku em ji cem wî dertên, bi piçûk û bi ehlê mala xwe û bi kar û 'emelê xwe yê dunyayê mijûl dibin, gelekî wan jibîr dikin. Ebû Bekir (r.) got: Qesem dikim bi Xwedê halê me jî wekî vî ye. Vêca ez û digel Ebû Bekir em çûn cem Resûlê Xwedê (s.) û min got: Ya Resûlê Xwedê Henzele bûye munafiq. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ew çi ye?" Min got: Ya Resûlê Xwedê wextê em li cem te bin, tu cennet û cehenneme tîne bira me, em dibin her wekî li ber çavên me ne, dema ku em ji cem te têne der em bi ehlê xwe û bi piçûkên xwe, îş û karê xwe ve meşxûl dibin –dikevne derdê dunyayê– em gelek tiştan jibîr dikin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ez bi wî yê ku nefsa min bi qudreta wî ye sond dixwim eger hûn li ser wî halê ku hûn li cem min bin –hûn dewam bikin– û di zikir de bin wê melekên Xwedê te'ala li ser ciyê we û di rêyên we de digel we musafehe bikin. Belê ey Henzele sa'etek halo û saetek jî wilo. Sê caran tekrar kir." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٢- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: بَيْنَمَا النَّبِيُّ ﷺ يَخْطُبُ إِذَا هُوَ بِرَجُلٍ قَائِمٍ فَسَأَلَ عَنْهُ فَقَالُوا: أَبُو إِسْرَائِيلَ، نَذَرَ أَنْ يَقُومَ وَلاَ يَقْعُدَ، وَلاَ يَسْتَظِلَّ وَلاَ يَتَكَلَّمَ وَيَصُومَ، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (مُرْهُ فَلْيَتَكَلَّمْ وَلْيَسْتَظِلَّ وَلْيَقْعُدْ وَلْيُتِمَّ صَوْمَهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

152- Ji Îbn "'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin, wextekê de Pêxemberê Xwedê (s.) xutbe dixwend dît ku mirovek li ser linga rawestaye sûal kir: "Ew çi kes e?" Gotin: Ebû Îsraîl e li ser xwe nezir kiriye dê li ber tavê be û rûnanê û xwe nade li ber sihê, –sîberê– naaxive û wê bi rojî be. Pêxember (s.) got: "Bila here ber sihê, bila rûnê; û bila rojiya xwe temam bike." *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ الْمُحَافَظَةِ عَلَى الأَعْمَال

## MUHAFEZEKIRINA KAR Û EMELÊN BAŞ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿أَلَمْ يَأْنِ لِلَّذِينَ آمَنُوا أَنْ تَخْشَعَ قُلُوبُهُمْ لِذِكْرِ اللَّهِ وَمَا نَزَلَ مِنَ الْحَقِّ وَلَا يَكُونُوا كَالَّذِينَ أُوتُوا الْكِتَابَ مِنْ قَبْلُ فَطَالَ عَلَيْهِمُ الأَمَدُ فَقَسَتْ قُلُوبُهُمْ﴾

"Qey ji bo wan kesên îman anîne, wext nehatiye ku qelbê wan ji bo zikrê Xwedê û ji bo tişta nazil bûyî ji heqqê –Qur'anê– bitirse; bila ew nebin wekî wan kesên ku beriya wan ji wan re kitab hatî– (file û Cihû) vêca li ser wan zeman dirêj bû û qelbê wan hişk bûn."[1]

﴿وَقَفَّيْنَا بِعِيسَى ابْنِ مَرْيَمَ وَآتَيْنَاهُ الإِنْجِيلَ وَجَعَلْنَا فِي قُلُوبِ الَّذِينَ اتَّبَعُوهُ رَأْفَةً وَرَحْمَةً وَرَهْبَانِيَّةً ابْتَدَعُوهَا مَا كَتَبْنَاهَا عَلَيْهِمْ إِلَّا ابْتِغَاءَ رِضْوَانِ اللَّهِ فَمَا رَعَوْهَا حَقَّ رِعَايَتِهَا﴾

"Dûv wan re me Îsa kurê Meryemê hinart/şand û me Încîl da wî û me rehmet kire qelbê wan kesên ku bûbûn tabi'ê wî. Rehbaniyet –terka zewacê û bes mijûlbûna bi îbadetê– wan ji cem xwe derxistibû. Me li ser wan nenivîsîbû, ji bo razîbûna Xwedê derxistibûn. Belê biheqî ri'ayeta wê nekirin."[2]

﴿وَلَا تَكُونُوا كَالَّتِي نَقَضَتْ غَزْلَهَا مِنْ بَعْدِ قُوَّةٍ أَنْكَاثاً﴾

"Hûn wekî wê jinika rîsê xwe ji bavekirî piştî baş ristî nebin." (Yanî îbadetê xwe bidomînin betal nekin).[3]

---

1 Hedîd, 57/16.
2 Hedîd, 57/27.
3 Nehl, 16/92.

  

﴿وَاعْبُدْ رَبَّكَ حَتَّى يَأْتِيَكَ الْيَقِينُ﴾

"Ya Muhemmed! Tu îbadetê Rebbê xwe bike ta ku mirin bi ser te de bê."[1]

وَأَمَّا الأَحَادِيثُ: فَمِنْهَا حَدِيثُ عَائِشَةَ ﵂ (وَكَانَ أَحَبُّ الدِّينِ إِلَيْهِ مَا دَاوَمَ صَاحِبُهُ عَلَيْهِ) وَقَدْ سَبَقَ فِي البَابِ قَبْلَهُ.

Ji hedîsan ev hedîsa bihûrî 'Aîşe (r.) gotiye: "Îbadetê zêde zêde Xwedê jê hez dike ew e ku xwedanê wê li ser wê dewam bike." Ev hedîs di babê ku di beriya vî babî de bihurî, derbas bû.

١٥٣- عَنْ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ نَامَ عَنْ حِزْبِهِ أَوْ عَنْ شَيْءٍ مِنْهُ فَقَرَأَهُ مَا بَيْنَ صَلَاةِ الْفَجْرِ وَصَلَاةِ الظُّهْرِ كُتِبَ لَهُ كَأَنَّمَا قَرَأَهُ مِنَ اللَّيْلِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

153- Ji 'Umerê kurê Xettab hatiye rîwayetkirin got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Her kesê ku hizba xwe ya di şevê de dixwend, hemûşik û yan hindek jê nexwandibe razê û dûre di neqeba nimêja sibehê û nîvro de bixwîne xêra wê her wekî di şevê de xwendî jê re tê nivîsandin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٤- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﵄ قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ الله ﷺ: (يَا عَبْدَ اللَّهِ، لَا تَكُنْ مِثْلَ فُلَانٍ كَانَ يَقُومُ اللَّيْلَ فَتَرَكَ قِيَامَ اللَّيْلِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

154-Ji 'Ebdullah kurê 'Emr kurê 'As hatiye rîwayetkirin got: Resûlê Xwedê (s.) ji min re got: "Ya 'Ebdullah tu wekî filan kesê neke. Bi şev radibû îbadet dikir, paşê jî îbadetê bi şev terikand." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٥- عَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ الله ﷺ إِذَا فَاتَتْهُ الصَّلَاةُ مِنَ اللَّيْلِ مِنْ وَجَعٍ اَوْ غَيْرِهِ صَلَّى مِنَ النَّهَارِ ثِنْتَيْ عَشَرَةَ رَكْعَةً. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

156-Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin got: Zemanê Pêxemberê Xwedê (s.) bi sedem nexweşiyê û yan bi sebebê tiştekî dî nimêja wî ya bi şevê –tehec-cud– lê derbas biba bi roj donzdeh (12) rekat nimêj dikir." *Muslim rîwayet kiriye.*

1 Hîcr, 15/99.

## بَابُ الأَمْرِ بِالْمُحَافَظَةِ عَلَى السُّنَّةِ وآدَابِهَا
## EMRÊ BI MUHAFEZEKIRINA SUNNET Û ADABÊ WÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَمَا آتَاكُمُ الرَّسُولُ فَخُذُوهُ وَمَا نَهَاكُمْ عَنْهُ فَانْتَهُوا﴾

"Tiştên ku Pêxember ji we re aniye bigrin, tiştên ku wî hûn jê dane me'n kirin hûn –xwe jê dûr bigrin- wan terk bikin."[1]

﴿وَمَا يَنْطِقُ عَنِ الْهَوَى إِنْ هُوَ إِلَّا وَحْيٌ يُوحَى﴾

"Muhemmed (s.) ji ber xwe ve xeber nade. Tiştê ku dibêje bes wehye."[2]

﴿قُلْ إِنْ كُنْتُمْ تُحِبُّونَ اللَّهَ فَاتَّبِعُونِي يُحْبِبْكُمُ اللَّهُ وَيَغْفِرْ لَكُمْ ذُنُوبَكُمْ﴾

"Ya Muhemmed! Bêje: Eger hûn ji Xwedê hez dikin bibine tabi'ê min wê Xwedê ji we hezbike û gunehên we 'efû bike."[3]

﴿لَقَدْ كَانَ لَكُمْ فِي رَسُولِ اللَّهِ أُسْوَةٌ حَسَنَةٌ لِمَنْ كَانَ يَرْجُو اللَّهَ وَالْيَوْمَ الْآخِرَ﴾

"Yê ku ji Xwedê û ji roja qiyametê bitirse ji wan re Resûlê Xwedê çi nimûneyek pak e."[4]

﴿فَلَا وَرَبِّكَ لَا يُؤْمِنُونَ حَتَّى يُحَكِّمُوكَ فِيمَا شَجَرَ بَيْنَهُمْ ثُمَّ لَا يَجِدُوا فِي أَنْفُسِهِمْ حَرَجًا مِمَّا قَضَيْتَ وَيُسَلِّمُوا تَسْلِيماً﴾

"Na, ez bi Rebbê te sond dixwim ta ku ew te nekine hekem di neqeba xwe de ew îmananîn nayêne hesabê. Piştî wê bi hukumkirina te di neqeba wan de hukumkir çi nexweşî di nefsa wan de çênebe û tam divê teslîmî emrê Xwedê bibin."[5]

﴿فَإِنْ تَنَازَعْتُمْ فِي شَيْءٍ فَرُدُّوهُ إِلَى اللَّهِ وَالرَّسُولِ إِنْ كُنْتُمْ تُؤْمِنُونَ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ﴾

"Heke ku we bawerî bi Xwedê û bi roja qiyametê anîbe, wextê ku we di tiştekî de îxtilaf/qirqir kir, hûnê muraceta Xwedê û Pêxember (Qur'an û Hedîs) bikin."[6]

1 Heşr, 59/7.
2 Necm, 53/3-4.
3 Alî 'Îmran, 3/31.
4 Ehzab, 33/21.
5 Nîsa, 4/65.
6 Nîsa, 4/59.

  

﴿مَنْ يُطِعِ الرَّسُولَ فَقَدْ أَطَاعَ اللَّهَ﴾

"Her kesê îta'eta Pêxember bike ew îta'eta Xwedê dike."[1]

﴿وَإِنَّكَ لَتَهْدِي إِلَى صِرَاطٍ مُسْتَقِيمٍ﴾

"(Ya Muhemmed!) Bêşik tu berê însanan didî rêka dirust."[2]

﴿فَلْيَحْذَرِ الَّذِينَ يُخَالِفُونَ عَنْ أَمْرِهِ أَنْ تُصِيبَهُمْ فِتْنَةٌ أَوْ يُصِيبَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ﴾

"Bila ew kesên bêemriya Xwedê û yan bêemriya Pêxemberê wî dikin ku belayek li wan bikeve û yan jî ji ezabek ku can bişewitîne bitirsin."[3]

﴿وَاذْكُرْنَ مَا يُتْلَى فِي بُيُوتِكُنَّ مِنْ آيَاتِ اللَّهِ وَالْحِكْمَةِ﴾

"Gelî jinan! Hûn wan ayetên Xwedê û hîkmetên wî di malên we dê ku tên xwendin bidine bîra xwe."[4]

١٥٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (دَعُونِي مَا تَرَكْتُكُمْ، إِنَّمَا أَهْلَكَ مَنْ كَانَ قَبْلَكُمْ كَثْرَةُ سُؤَالِهِمْ وَاخْتِلَافُهُمْ عَلَى أَنْبِيَائِهِمْ فَإِذَا نَهَيْتُكُمْ عَنْ شَيْءٍ فَاجْتَنِبُوهُ، وَإِذَا أَمَرْتُكُمْ بِأَمْرٍ فَأْتُوا مِنْهُ مَا اسْتَطَعْتُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

156- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hindî ku min hûn bi tiştekî teklîf nekiribe hûn min bihêlin min bihêlin. Çunkî bêşik ew tiştê ku ew kesên beriya we birin helakê pirsiyara wan ya gelek bû û bêemriya wan digel Pêxemberên wan bû. Vêca zemanê min hûn da men'kirin ji tiştekî hûn xwe ji wî dûr bigrin, wextê min emrê we bi tiştekî kir hûn jî li gor quweta xwe wê pêk bînin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٧- عَنْ أَبِي نَجِيحٍ الْعِرْبَاضِ بْنِ سَارِيَةَ ﷺ قَالَ: وَعَظَنَا رَسُولُ اللهِ ﷺ مَوْعِظَةً بَلِيغَةً ذَرَفَتْ مِنْهَا الْعُيُونُ وَوَجِلَتْ مِنْهَا الْقُلُوبُ، فَقُلْنَا: يَا رَسُولَ اللَّهِ كَأَنَّ مَوْعِظَةُ مُوَدِّعٍ فَأَوْصِنَا، فَقَالَ: (أُوصِيكُمْ بِتَقْوَى اللَّهِ وَالسَّمْعِ وَالطَّاعَةِ وَإِنْ تَأَمَّرَ عَلَيْكُمْ عَبْدًا حَبَشِيًّا، فَإِنَّهُ مَنْ يَعِشْ مِنْكُمْ بَعْدِي فَسَيَرَى اخْتِلَافًا كَثِيرًا فَعَلَيْكُمْ بِسُنَّتِي وَسُنَّةِ الْخُلَفَاءِ الْمَهْدِيِّينَ الرَّاشِدِينَ وَعَضُّوا عَلَيْهَا بِالنَّوَاجِذِ، وَإِيَّاكُمْ وَمُحْدَثَاتِ الْأُمُورِ، فَإِنَّ كُلَّ مُحْدَثَةٍ بِدْعَةٌ

1 Nîsa, 4/80.
2 Şûra, 42/52.
3 Nûr, 24/63.
4 Ehzab, 33/34.

وَكُلَّ بِدْعَةٍ ضَلَالَةٌ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

157- Ji Ebû Necîh 'Îrbad kurê Sariye (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Rojekê piştî nimêja 'eşayê Pêxember (s.) wa'zek belîx –tê fêm kirin– da, ji tesîra vê wa'zê tirs kete dilan û hestir ji çavan hatine xwarê. Me got: Ya Resûlê Xwedê! Ev wa'z û nesîheta te wekî ya xatirxwestinê ye. De ka wesiyetê li me bike/şîretê li me bike. Wî got: "Ez nesîheta teqwayê û ya îta'etê li we dikim. Çendan li ser we 'ebdek Hebeşî bê tayîn kirin. Bêguman yên ku ji we bimînin dê gelek îxtilafan bibînin. Vêca lazim e li ser we ku hûn bi sunneta min/bi rêya min û bi sunneta Xelîfên Raşidîn bigrin. Û paş bernedin û xwe ji wan tiştên ku nû derdikevin dûr bigrin. Çunkî temamê bid'eta delalet e/jirêwindabûn e." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û gotine, hedîs hesen e û sehîh e.*

١٥٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ: (قَالَ كُلُّ أُمَّتِي يَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ إِلَّا مَنْ أَبَى) قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ وَمَنْ يَأْبَى قَالَ: (مَنْ أَطَاعَنِي دَخَلَ الْجَنَّةَ وَمَنْ عَصَانِي فَقَدْ أَبَى). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

158- Ji Ebû Hureyre (r.), bêşik Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ji xeyn wî kesê nevê/nepejirîne, wekî din ummeta min tev de wê herin behiştê." Hate gotin: Ya Resûlê Xwedê! Yê nevê kî ye? Got: "Yê îta'eta min bike ew dê biçe cennetê, yê ku bêemriya min bike ew yê nevê ye." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٥٩- عَنْ أَبِي مُسْلِم، وَقِيلَ: أَبِي إِيَاسِ بْنِ سَلَمَةَ بْنِ الأَكْوَعِ ﷺ أَنَّ رَجُلاً أَكَلَ عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ بِشِمَالِهِ فَقَالَ: (كُلْ بِيَمِينِكَ) قَالَ: لَا أَسْتَطِيعُ، قَالَ: (لَا اسْتَطَعْتَ) مَا مَنَعَهُ إِلَّا الْكِبْرُ، قَالَ فَمَا رَفَعَهَا إِلَى فِيهِ. رَوَاهُ مُسْلِم.

159- Ji Ebû Muslim yan ji Ebû Iyas Seleme kurê Ekwe' (r.) hatiye rîwayetkirin. Mirovekî li cem Pêxemberê Xwedê (s.) bi destê xwe yê çepê xwarin xwar. Resûlê Xwedê ji wî re got: "Tu bi destê xwe yê rastê bixwe." Wî got: Ez nikarim. Resûlê Xwedê got: "Tu nekaribî." Ji xeynê meznatiya nefsa wî tu manî'ê ku bi destê xwe yê rastê bixwe tunebûn. Êdî wî mirovî nekarî destê xwe hilde devê xwe. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٦٠- عَنْ أَبِي عَبْدِ اللَّهِ النُّعْمَانَ بْنَ بَشِيرٍ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (لَتُسَوُّنَّ صُفُوفَكُمْ أَوْ لَيُخَالِفَنَّ اللَّهُ بَيْنَ وُجُوهِكُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُسَوِّي صُفُوفَنَا حَتَّى كَأَنَّمَا يُسَوِّي بِهَا الْقِدَاحَ حَتَّى رَأَى أَنَّا قَدْ عَقَلْنَا عَنْهُ، ثُمَّ خَرَجَ يَوْماً فَقَامَ حَتَّى كَادَ أَن يُكَبِّرُ، فَرَأَى رَجُلاً بَادِياً صَدْرُهُ مِنَ الصَّفِّ فَقَالَ: (عِبَادَ اللَّهِ لَتُسَوُّنَّ صُفُوفَكُمْ أَوْ لَيُخَالِفَنَّ اللَّهُ بَيْنَ وُجُوهِكُمْ).

160- Ji Ebû ‘Ebdullah Nu‘man kurê Beşîr (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst digot: “Sond dixwim hûn dê seffên xwe rast bikin yan jî wê Xwedê te‘ala tefrîqê bixe neqeba we de.” *Buxari û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetek dî ya Muslim de Pêxemberê Xwedê (s.) got: Wekî tîran seffên me rast dikir ta ku zanî me ji wî fêmkir/em ji wî hîn bûn, paşê Pêxemberê Xwedê (s.) rojekê derket hat û hindik mabû ku tekbîra nimêjê bîne, dît ku ê singa miroveKî ji sefa nimêjê derketiye bel bûye. Got: “Ey ‘îbadên Xwedê! Lazim e li ser we hûn seffên xwe rast bikin yan jî wê Xwedê te‘ala îxtilafê bixîne neqeba we de.”

١٦١ - عَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ قَالَ: احْتَرَقَتْ بَيْتٌ بِالْمَدِينَةِ عَلَى أَهْلِهِ مِنَ اللَّيْلِ، فَلَمَّا حُدِّثَ رَسُولُ الله ﷺ بِشَأْنِهِمْ قَالَ: (إِنَّ هذهِ النَّارَ عَدُوٌّ لَكُمْ، فَإِذَا نِمْتُمْ فَأَطْفِؤُهَا عَنْكُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

161- Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Bi şev li bajarê Medînê malek şewitî. Wextê ku Pêxemberê Xwedê (s.) pê xeberdar bû, got: “Ev agirê han neyarê we ye. Zemanê hûn razan agirê xwe bitemirînin.” *Buxari û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٢ - وَعنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (إِنَّ مَثَلَ مَا بَعَثَنِي اللَّهُ بِهِ مِنَ الْهُدَى وَالْعِلْمِ كَمَثَلِ غَيْثٍ أَصَابَ أَرْضًا فَكَانَتْ مِنْهَا طَيِّبَةٌ قَبِلَتِ الْمَاءَ فَأَنْبَتَتِ الْكَلأَ وَالْعُشْبَ، الْكَثِيرَ وَكَانَتْ مِنْهَا أَجَادِبُ أَمْسَكَتِ الْمَاءَ فَنَفَعَ اللَّهُ بِهَا النَّاسَ فَشَرِبُوا مِنْهَا وَسَقَوْا وَزَرَعُوا، وَأَصَابَتْ مِنْهَا طَائِفَةً أُخْرَى، إِنَّمَا هِيَ قِيعَانٌ لَا تُمْسِكُ مَاءً وَلَا تُنْبِتُ كَلأً، فَذَلِكَ مَثَلُ مَنْ فَقُهَ فِي دِينِ اللَّهِ وَنَفَعَهُ مَا بَعَثَنِي اللَّهُ بِهِ فَعَلِمَ وَعَلَّمَ، وَمَثَلُ مَنْ لَمْ يَرْفَعْ بِذَلِكَ رَأْسًا وَلَمْ يَقْبَلْ هُدَى اللَّهِ الَّذِي أُرْسِلْتُ بِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

162- Dîsa ji Ebû Mûsa hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mesela wî tiştê Xwedê te'ala ez pê şandim/kirim Pêxember, ji hîdayetê û 'ilmê mesela barana pirr e ku li ser erdê bibare, vêca qismek ji erdê heye taze ye/rind e, avê li xwe qebûl dike û gelek giyayî heşîn dike. Qismek dî heye bes wekî sedê/bendavê avê digre/berhev dike, Xwedê pê menfe'etê dide însanan. Vêca ew jê vedixwin û pê erazî û çandiniyên xwe av didin. Qismek dî yê erdê heye ku baran lê dibare ew erd bes erdekî rast e/hulû ye, ne avê digre/kom dike û ne jî giyayî heşîn dike. Vêca ev mesela wekî mesela wî kesê ku dînê Xwedê de bûyî xwedan'ilm û xwedan-me'rîfet, tişta ku Xwedê ez pê hinartim fayde da wî û zanî û pê 'emel kir, bi mirovan jî da zanîn. Û yek jî wekî mesela wî kesê ku serê xwe bi bal vê hîdayetê ve ranekiriye û ew hîdayeta/Qur'ana ku Xwedê ez pê şandime qebûl nekiriye."[1] *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٣- عَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَثَلِي وَمَثَلُكُمْ كَمَثَلِ رَجُلٍ أَوْقَدَ نَاراً فَجَعَلَ الْجَنَادِبُ وَالْفَرَاشُ يَقَعْنَ فِيهَا وَهُوَ يَذُبُّهُنَّ عَنْهَا، وَأَنَا آخِذٌ بِحُجَزِكُمْ عَنِ النَّارِ وَأَنْتُمْ تَفَلَّتُونَ مِنْ يَدِي). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

163-Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mesela min û mesela we, wekî miroveki agirek pêxistiye vêca heşerat û perwane xwe diavêjin nav wî agirî. Welhal ew mirov jî wana ji agirî dûr dike. Vêca ez jî bi delinga we/bi dawa we digrim dibêjim: Îta'eta Xwedê û Resûlê wî bikin, da ku hûn neçine êgir, hûn xwe ji destê min dertînin." *Muslim ev hedîs rîwayet kiriye.*

١٦٤-وَعَنْهُ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺأَمَرَ بِلَعْقِ الأَصَابِعِ وَالصَّحْفَةِ وَقَالَ: (إِنَّكُمْ لَا تَدْرُونَ فِي أَيِّهِ الْبَرَكَةُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

---

1 Xulase: Însan jî wekî erdê sê qism in:

a-'Alim e, 'amil e, mue'lim e: Zana ye û bi zanabûna xwe 'emel dike, bi xelkê jî dide zanîn. Wekî qismê yekê yê erdê.

b-'Alim e/zana ye, mue'llim e: Feyda xelkê ji wî heye. Bes ne 'amil e, ew bi xwe li gorî 'ilmê xwe 'emel nake. Wekê qismê erdê yê dudan.

c-Ne 'alim e/ne zana ye û ne xwestiye ku bizane, ne feyda wî ji wî re heye, ne jî ji xeynê wî re heye, Wekî qismê erdê yê sisyan.

Ey Xwedayê xwedanlutf û xwedanîhsana mezin! Tu me bigerînî ji qismê yekê. Tu di umrê me yê mayî de ilm û 'emel û ta'lîmê û îxlasê bikî para me. Amîn.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: (إِذَا وَقَعَتْ لُقْمَةُ أَحَدِكُمْ فَلْيَأْخُذْهَا، فَلْيُمِطْ مَا كَانَ بِهَا مِنْ أَذًى وَلْيَأْكُلْهَا وَلَا يَدَعْهَا لِلشَّيْطَانِ، وَلَا يَمْسَحْ يَدَهُ بِالْمِنْدِيلِ حَتَّى يَلْعَقَ أَصَابِعَهُ، فَإِنَّهُ لَا يَدْرِي فِي أَيِّ طَعَامِهِ الْبَرَكَةُ)

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: (إِنَّ الشَّيْطَانَ يَحْضُرُ أَحَدَكُمْ عِنْدَ كُلِّ شَيْءٍ مِنْ شَأْنِهِ حَتَّى يَحْضُرَهُ عِنْدَ طَعَامِهِ، فَإِذَا سَقَطَتْ مِنْ أَحَدِكُمُ اللُّقْمَةُ فَلْيُمِطْ مَا كَانَ بِهَا مِنْ أَذًى ثُمَّ لِيَأْكُلْهَا وَلَا يَدَعْهَا لِلشَّيْطَانِ)

164-Dîsa ji Cabir hatiye rîwayetkirin, bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) bi alastina tilyan û bi alastina firaxê emir kiriye û gotiye: "Hûn nizanin di kîjan te'amê/xwarina we de bereket heye." *Muslim rîwayet kiriye.*

Di rîwayetek dî ya Muslim de: "Zemanê ji we pariyê yekî ket bila bigre û paqij bike û bila bixwe û bila nehêle ji bo şeytan û heta tilyên xwe nemêje bila destê xwe bi destmalê paqij neke. Çunkî nizane bereket di kîjan teamî de ye."

Di rîwayetek dî de: Bêşik şeytan digel yekî ji we ye di hemû kar û halê wî de. Heta hazirê xwarina wî ye jî. Vêca zemanê pariyek ji destê yekî ji we kete xwarê bila ew tiştê pêve maye jê bavêje û bila bixwe û ji bo şeytan nehêle."

١٦٥- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: قَامَ فِينَا رَسُولُ الله ﷺ بِمَوْعِظَةٍ فَقَالَ: (يَا أَيُّهَا النَّاسُ، إِنَّكُمْ مَحْشُورُونَ إِلَى اللَّهِ تَعَالَى حُفَاةً عُرَاةً غُرْلاً ثُمَّ قَرَأَ (كَمَا بَدَأْنَا أَوَّلَ خَلْقٍ نُعِيدُهُ وَعْداً عَلَيْنَا إِنَّا كُنَّا فَاعِلِينَ) أَلَا وَإِنَّ أَوَّلَ الْخَلَائِقِ يُكْسَى يَوْمَ الْقِيَامَةِ إِبْرَاهِيمُ، أَلَا وَإِنَّهُ سَيُجَاءُ بِرِجَالٍ مِنْ أُمَّتِي فَيُؤْخَذُ بِهِمْ ذَاتَ الشِّمَالِ، فَأَقُولُ: يَا رَبِّ أَصْحَابِي، فَيُقَالُ إِنَّكَ لَا تَدْرِي مَا أَحْدَثُوا بَعْدَكَ، فَأَقُولُ كَمَا قَالَ الْعَبْدُ الصَّالِحُ: (وَكُنْتُ عَلَيْهِمْ شَهِيداً مَا دُمْتُ فِيهِمْ فَلَمَّا تَوَفَّيْتَنِي... إِلَى قَوْلِهِ، الْعَزِيزُ الْحَكِيمُ)-الْمَائِدَة١١٨- فَيُقَالُ لِي: (إِنَّهُمْ لَمْ يَزَالُوا مُرْتَدِّينَ عَلَى أَعْقَابِهِمْ مُنْذُ فَارَقْتَهُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

165- Ji 'Ebdullah kurê 'Ebbas (r.) got: Pêxemberê Xwedê (s.) rabû ji me re wa'z û nesîhet da. Got: "Gelî mirovan! Bêşik hûn dê piştî rabûna

ji gorê bên heşir kirin/kom kirin, bi bal Xwedê 'ezze we celle ve pêxwas, tazî û nesînet kirî. "Me çawa pêşiyê de afirandî emê dîsa biafirînin. Soz be emê dê vê bikin." (Enbiya, 21/104) Hişyarbin! Bêşik roja qiyametê yê ewwel ji mexlûqatan ku bê libas kirin Îbrahîm Pêxember e (s.). Hişyarbin! Wê hindek mirov ji ummeta min bên anîn, dê ewan bêne danîn li aliyê çepê. Vêca ezê bibêjim ewan hevalên min in/misilman in ji ummeta min in. Wê bê gotin: Ey Muhemmed! Tu nizanî wan piştî te çi derxistin. Vêca ezê jî wekî 'ebdê Salih/Îsa (e.) bibêjim: "Hindî ku ez di nav wan de bûm, ez şahidê wan bûm. Wextê te ez mirandim, her tu bûyî çavnêrê wan û tu li ser her tiştî hazir û nazir î. Eger tu wan ezab bikî ew 'îbadên te ne û eger tu wan bixefirinî bêşik tu her 'ezîz î/xalibî li ser her kesî û hekîm î/karê te xwedanhîkmet e." (Ma'îde, 5/117-118) Vêca wê ji min re bê gotin: Piştî ku te ji wan mufareqet kir/tu gîhîştî Rebbê xwe, ewna vegeriyan/bûne murted, dînê xwe guhertin. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٦٦- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مُغَفَّلٍ قَالَ: نَهَى النَّبِيُّ ﷺ عَنِ الْخَذْفِ، وَقَالَ: (إِنَّهُ لَا يَقْتُلُ الصَّيْدَ وَلَا يَنْكَأُ الْعَدُوَّ، وَإِنَّهُ يَفْقَأُ الْعَيْنَ وَيَكْسِرُ السِّنَّ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: أَنَّ قَرِيبًا لِعَبْدِ اللَّهِ بْنِ مُغَفَّلٍ خَذَفَ فَنَهَاهُ، وَقَالَ: إِنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ نَهَى عَنِ الْخَذْفِ، وَقَالَ: (إِنَّهَا لَا تَصِيدُ صَيْداً) ثُمَّ عَادَ فَقَالَ: أُحَدِّثُكَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ نَهَى عَنْهُ ثُمَّ عُدْتَ تَخْذِفُ، لَا أُكَلِّمُكَ أَبَدَ.

166- Ji 'Ebdullah kurê Muxeffel (r.), ot: Pêxemberê Xwedê (s.) avêtina bertîvka qedexe kiriye û gotiye: "Bertîvk ne nêçîrê dikuje û ne neyarî dimirîne, bes çav derdixe û diran dêşîne." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetek dî de: Mirovek nêzîkî 'Ebdullahê kurê Muxeffel bertîvek avêt jê re got: Pêxemberê Xwedê (s.) ev qedexe kiriye û gotiye: "Bêguman ew nêçîrê nake, paşê jî ewî dîsa (bertîvek) 'emilandi gote wî, ez ji te re dibêjim Resûlê Xwedê (s.) ev qedexe kiriye, paşê jî tu 'eynî karî berdewam dikî, êdî ez digel te naaxivim."

١٦٧- عَنْ عَابِسِ بْنِ رَبِيعَةَ قَالَ: رَأَيْتُ عُمَرَ بْنَ الْخَطَّابِ ﷺ يُقَبِّلُ الْحَجَرَ، يَعْنِي الأَسْوَدَ، وَيَقُولُ: (أَعْلَمُ أَنَّكَ حَجَرٌ مَا تَنْفَعُ وَلَا تَضُرُّ، وَلَوْلَا أَنِّي رَأَيْتُ رَسُولَ الله ﷺ

يُقَبِّلُكَ مَا قَبَّلْتُكَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

167- Ji ‘Abisê kurê Rabî‘e (r.), got: Min dît ku ‘Umer kurê Xettab berê reş maç dike/radimûse û digot: Bêşik ez dizanim tu berek/kevirê, ne zerarê didî û ne jî feydê didî, bes eger min nedîtibûya Resûlê Xwedê (s.) tu maç dikirî min jî tu maçî nedikirî. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ وُجُوبِ الإِنْقِيَادِ لِحُكْمِ اللَّهِ تَعَالَى

## WACÎBBÛNA ÎTAETA HUKMÊ XWEDÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿فَلَا وَرَبِّكَ لَا يُؤْمِنُونَ حَتَّى يُحَكِّمُوكَ فِيمَا شَجَرَ بَيْنَهُمْ ثُمَّ لَا يَجِدُوا فِي أَنْفُسِهِمْ حَرَجاً مِمَّا قَضَيْتَ وَيُسَلِّمُوا تَسْلِيماً﴾

“Nexêr, ez bi Rebbê te sond dixwim, heta ewan ji ber tiştên tevlihevbûyî di mabeyna wan de te nekin hakim, paşê di hukmê te daye de jî çi nexweşî di nefsa xwe de nebînin û temamî teslîmî emrê te nebin, îmana wan wan çunîne.”[1]

(إِنَّمَا كَانَ قَوْلُ الْمُؤْمِنِينَ إِذَا دُعُوا إِلَى اللَّهِ وَرَسُولِهِ لِيَحْكُمَ بَيْنَهُمْ أَنْ يَقُولُوا سَمِعْنَا وَأَطَعْنَا وَأُولَئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ)

*Bêşik û bêguman gotina mu’minan ewa ye zemanê ku dewa wan hate kirin bi bal Xwedê û bi bal Resûlê wî ve da ku di mabeyna wan de hukum bike, bibêjin, me bihîst û me îta‘et kir her wan kesin ku gihîştin meqsûd û armanca xwe.”*[2]

١٦٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: لَمَّا نَزَلَتْ عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ (لِلَّهِ مَا فِي السَّمَوَاتِ وَمَا فِي الأَرْضِ وَإِنْ تُبْدُوا مَا فِي أَنْفُسِكُمْ أَوْ تُخْفُوهُ يُحَاسِبْكُمْ بِهِ اللَّهُ فَيَغْفِرُ لِمَنْ يَشَاءُ وَيُعَذِّبُ مَنْ يَشَاءُ وَاللَّهُ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ) [البَقَرَة:٢٨٤] فَاشْتَدَّ ذَلِكَ عَلَى أَصْحَابِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ، فَأَتَوْا رَسُولَ اللَّهِ ﷺ ثُمَّ بَرَكُوا عَلَى الرُّكَبِ فَقَالُوا: أَيْ رَسُولَ اللَّهِ كُلِّفْنَا مِنَ

1 Nîsa, 4/65.
2 Nûr, 24/51.

الأَعْمَالِ مَا نُطِيقُ: الصَّلَاةَ وَالصِّيَامَ وَالْجِهَادَ وَالصَّدَقَةَ، وَقَدْ أُنْزِلَتْ عَلَيْكَ هَذِهِ الْآيَةُ وَلَا نُطِيقُهَا، قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَتُرِيدُونَ أَنْ تَقُولُوا كَمَا قَالَ أَهْلُ الْكِتَابَيْنِ مِنْ قَبْلِكُمْ: سَمِعْنَا وَعَصَيْنَا بَلْ قُولُوا: سَمِعْنَا وَأَطَعْنَا غُفْرَانَكَ رَبَّنَا وَإِلَيْكَ الْمَصِيرُ) فَلَمَّا اقْتَرَأَهَا الْقَوْمُ ذَلَّتْ بِهَا أَلْسِنَتُهُمْ فَأَنْزَلَ اللَّهُ فِي إِثْرِهَا (آمَنَ الرَّسُولُ بِمَا أُنْزِلَ إِلَيْهِ مِنْ رَبِّهِ وَالْمُؤْمِنُونَ كُلٌّ آمَنَ بِاللَّهِ وَمَلَائِكَتِهِ وَكُتُبِهِ وَرُسُلِهِ لَا نُفَرِّقُ بَيْنَ أَحَدٍ مِنْ رُسُلِهِ وَقَالُوا سَمِعْنَا وَأَطَعْنَا غُفْرَانَكَ رَبَّنَا وَإِلَيْكَ الْمَصِيرُ) فَلَمَّا فَعَلُوا ذَلِكَ نَسَخَهَا اللَّهُ تَعَالَى فَأَنْزَلَ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ: (لَا يُكَلِّفُ اللَّهُ نَفْسًا إِلَّا وُسْعَهَا لَهَا مَا كَسَبَتْ وَعَلَيْهَا مَا اكْتَسَبَتْ رَبَّنَا لَا تُؤَاخِذْنَا إِنْ نَسِينَا أَوْ أَخْطَأْنَا) [البقرة:٢٨٦] قَالَ: (نَعَمْ) (رَبَّنَا وَلَا تَحْمِلْ عَلَيْنَا إِصْراً كَمَا حَمَلْتَهُ عَلَى الَّذِينَ مِنْ قَبْلِنَا) قَالَ نَعَمْ (رَبَّنَا وَلَا تُحَمِّلْنَا مَا لَا طَاقَةَ لَنَا بِهِ) قَالَ: (نَعَمْ) (وَاعْفُ عَنَّا وَاغْفِرْ لَنَا وَارْحَمْنَا أَنْتَ مَوْلَانَا فَانْصُرْنَا عَلَى الْقَوْمِ الْكَافِرِينَ) قَالَ: (نَعَمْ). رَوَاهُ مُسْلِم.

168- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Zemanê ev ayetana ji Pêxemberê Xwedê (s.) re nazil bûn: “Di erdê de û di asîmanan de çi heye mulkê Xwedê ye; hûn ew tişta di dilê we de ye çi eşkere bikin çi veşêrin Xwedê te‘ala dê hesabê we ji we bike.” (Beqere, 2/284) Sehabiyên Pêxemberê Xwedê (s.) gelekî fikar kirin û çûn cem Resûlê Xwedê (s.) paşê jî li ser çokên xwe rûniştin û gotin: Ey Resûlê Xwedê! Li gora taqeta me/quweta me teklîfa me hatiye kirin bi kar û ‘emelan; nimêj, cîhad, rojî, sedeqe. Welhal bêşik ev ayeta ku ji te re nazilbûyî em neşên wê pêk bînin. Resûlê Xwedê (s.) got: “Ma hûn jî dixwazin wekî ehlê Tewrat û Încîlê ji beriya we gotin: Me bihîst me bêemrî kir bibêjin? Hûn bibêjin: Me bihîst û me îta‘et kir. Em teleba xefirandina te dikin ey Rebbê me. Her bi bal te ve ye vegerandin. Zemanê sehabiyan ew gotin dubare kirin û zimanên wan jî pê hîn bû, Xwedê ‘ezze we celle piştî wê re ev ayet nazil kir: “Resûl bawerî bi wehya ku ji teref Xwedê ve jê re hatiye anî û bawermendan jî pê bawerî anîn. Her yekî ji wan bawerî bi Xwedê û bi melekên wî û bi kitêbin wî û bi Pêxemberên wî anîn. (Gotin) Em ferqiyetê di neqeba tu pêxemberên Xwedê de nakin û gotin: Me bihîst û me îtaet kir em daxwaza xefirandina te dikin Ey Rebbê me li bal Te ve ye veger. Vêca zemanê wan wisan gotin Xwedê ‘ezze we celle ew ayet nesix kir û ev ayet nazil kir: “Xweda, tu kesî

  

mukellef nake bi tiştê ku ji quweta wî bi der. Tişta di leh û ‘eleyhîyê kes de, bes ‘emelê wî ye. Ey Rebbê me! Tu ezab nedî me, eger me jibîr kir û yan me xeta kir.” Got: Belê. “Ya Rebbê me! Tu barê giran daneyne li ser me, wekî te danî li ser wan kesên beriya me.” Got: Belê. “Ya Rebbê me! Tu zêdeyê quweta me teklîfa me nekî.” Got: Belê. “Me ‘efû bike, me bixefirîne, rehmê li me bike, her tu yî mewlayê me. Tu me xalib bikî li ser qewmên kafir.” Xwedayê te‘ala got: Belê. *Muslim riwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهْي عَن البِدَعِ وَمُحْدثَاتِ الأمُور
## MEN‘KIRINA JI BÎD’EYAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿فَمَا ذَا بَعْدَ الْحَقِ إِلَّا الضَّلَالُ﴾

“Piştî heqiyê, ji bilî delaletê/rêşaşiyê çi heye?”[1]

﴿مَا فَرَّطْنَا فِي الْكِتَابِ مِنْ شَيْءٍ﴾

“Me di kitêbê de tiştek kêm nehiştiye.”[2]

﴿فَإِنْ تَنَازَعْتُمْ فِي شَيْءٍ فَرُدُّوهُ إِلَى اللَّهِ وَالرَّسُولِ﴾

“Eger we di tiştekî de munaqeşe kir, hûn murace‘eta Xwedê û ya Pêxemberê wî bikin.” Yanî murace‘eta Qur‘an û Hedîsê bikin.[3]

﴿وَأَنَّ هذَا صِرَاطِى مُسْتَقِيمًا فَاتَّبِعُوهُ وَلَا تَتَّبِعُوا السُّبُلَ فَتَفَرَّقَ بِكُمْ عَنْ سَبِيلِهِ﴾

“Bêguman rêka min ya rast ev e. Hûn jî wî dînî bigrin. Wan rêyên muxalifê vê rêyê negrin ku hûn ji rêka rast û dirust bikevin.”[4]

﴿قُلْ إِنْ كُنْتُمْ تُحِبُّونَ اللَّهَ فَاتَّبِعُونِي يُحْبِبْكُمُ اللَّهُ وَيَغْفِرْ لَكُمْ ذُنُوبَكُمْ﴾

“(Ya Muhemmed) Tu bêje: Eger hûn ji Xwedê te‘ala hez dikin hûn bibne tabi‘ê min wê Xwedê ji we hez bike û wê gunehên we ‘efû bike.”[5]

---

1 Yûnus, 10/32.
2 En’am, 6/38.
3 Nîsa, 4/59.
4 En‘am, 6/153.
5 Alî ‘Îmran, 3/31.

١٦٩- عَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (مَنْ أَحْدَثَ فِي أَمْرِنَا هذَا مَا لَيْسَ لَهُ مِنْهُ فَهُوَ رَدٌّ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: (مَنْ عَمِلَ عَمَلاً لَيْسَ عَلَيْهِ أَمْرُنَا فَهُوَ رَدٌّ)

169- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê vî emrê me de/Îslamê de tiştekî ku ne ji wî be ji ber xwe derxe ew merdûd e/ne meqbûl e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetek dî ya Muslim de: "Her kesê 'emelekî bike li ser wî 'emelî emrê me tunebe ew merdûd e/nayê qebûl kirin."

١٧٠- عَنْ جَابِرٍ ﵁ قَالَ كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا خَطَبَ احْمَرَّتْ عَيْنَاهُ وَعَلَا صَوْتُهُ وَاشْتَدَّ غَضَبُهُ، حَتَّى كَأَنَّهُ مُنْذِرُ جَيْشٍ يَقُولُ: (صَبَّحَكُمْ وَمَسَّاكُمْ) وَيَقُولُ: (بُعِثْتُ أَنَا وَالسَّاعَةُ كَهَاتَيْنِ) وَيَقْرُنُ بَيْنَ إِصْبَعَيْهِ السَّبَّابَةِ وَالْوُسْطَى، وَيَقُولُ: (أَمَّا بَعْدُ، فَإِنَّ خَيْرَ الْحَدِيثِ كِتَابُ اللَّهِ، وَخَيْرُ الْهُدَى هُدَى مُحَمَّدٍ، وَشَرُّ الْأُمُورِ مُحْدَثَاتُهَا وَكُلُّ بِدْعَةٍ ضَلَالَةٌ) ثُمَّ يَقُولُ: (أَنَا أَوْلَى بِكُلِّ مُؤْمِنٍ مِنْ نَفْسِهِ، مَنْ تَرَكَ مَالاً فَلِأَهْلِهِ، وَمَنْ تَرَكَ دَيْناً أَوْ ضَيَاعاً فَإِلَيَّ وَعَلَيَّ). رَوَاهُ مُسْلِم.

170- Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Zemanê Pêxemberê Xwedê (s.) xutbe bixwenda çavên wî sor dibûn, dengê wî bilind dibû, hîddeta wî zêde dibû, ta her wekî yê leşkerekî ji neyarên wî bitirsîne û dibêje: "Mumkin e di sibehê de û di êvarê de leşkerê neyar li ser we de bigre" bû. Û digot: "Ez û qiyamet wekî van her du tiliyan hatine. Bi tiliya şehadetê û bi tiliyan navçarê îşaret dikir digot: "Piştî vê yekê, bê şik baştirînê gotinan, Kitêba Xwedê ye û baştirînê rêyan, rêya Muhemmed e (s.). Nebaştirînê tiştan jî ewên ku bi navê din nû têne derxistin. Her bîd'e delalet e. Ez ji nefsa mu'minan jî nêziktirê wan im. Kesê (bimre) şûna xwe de mal bihêle ji bo ehlê xwe dihêle. Kesê deynekî bihêle û yêtîman bihêle ewan ji min re dihêle." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابٌ فِيمَنْ سَنَّ سَنَّةً حَسَنَةً أَوْ سَيئَةً

## NÎŞANDANA RÊYÊN QENC Û RÊYÊN XERAB

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَالَّذِينَ يَقُولُونَ رَبَّنَا هَبْ لَنَا مِنْ أَزْوَاجِنَا وَذُرِّيَّاتِنَا قُرَّةَ أَعْيُنٍ وَاجْعَلْنَا لِلْمُتَّقِينَ إِمَاماً﴾

"Ew kesên dibêjin ya Rebbê me! Tu ehl û ewladên ku çavên me rohnî bikin ji bo me îhsan bike û tu me ji (mutteqiyan re) yên ku xwe diparêzin re bikî rêber."[1]

﴿وَجَعَلْنَاهُمْ أَئِمَّةً يَهْدُونَ بِأَمْرِنَا﴾

"Me wan kirin rêber, bi emrê me îrşada însanan dikin bi bal xêrê ve."[2]

١٧١ - عَنْ أَبِى عَمْرٍ جَرِيرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: كُنَّا عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي صَدْرِ النَّهَارِ فَجَاءَهُ قَوْمٌ حُفَاةٌ عُرَاةٌ مُجْتَابِي النِّمَارِ، أَوِ الْعَبَاءِ، مُتَقَلِّدِي السُّيُوفِ، عَامَّتُهُمْ مِنْ مُضَرَ، بَلْ كُلُّهُمْ مِنْ مُضَرَ، فَتَمَعَّرَ وَجْهُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ لِمَا رَأَى بِهِمْ مِنَ الْفَاقَةِ فَدَخَلَ ثُمَّ خَرَجَ فَأَمَرَ بِلَالاً فَأَذَّنَ وَأَقَامَ، فَصَلَّى ثُمَّ خَطَبَ فَقَالَ: (يَا أَيُّهَا النَّاسُ اتَّقُوا رَبَّكُم الَّذِي خَلَقَكُمْ مِنْ نَفْسٍ وَاحِدَةٍ) إِلَى آخِرِ ٱلآيَةِ ﴿إِنَّ اللَّهَ كَانَ عَلَيْكُمْ رَقِيباً﴾ وَٱلآيَةَ الَّتِي فِي الْحَشْرِ ﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا اتَّقُوا اللَّهَ وَلْتَنْظُرْ نَفْسٌ مَا قَدَّمَتْ لِغَدٍ وَاتَّقُوا اللَّهَ﴾ تَصَدَّقَ رَجُلٌ مِنْ دِينَارِهِ مِنْ دِرْهَمِهِ مِنْ ثَوْبِهِ مِنْ صَاعِ بُرِّهِ مِنْ صَاعِ تَمْرِهِ حَتَّى قَالَ وَلَوْ بِشِقِّ تَمْرَةٍ قَالَ فَجَاءَ رَجُلٌ مِنَ الأَنْصَارِ بِصُرَّةٍ كَادَتْ كَفُّهُ تَعْجِزُ عَنْهَا، بَلْ قَدْ عَجَزَتْ، قَالَ ثُمَّ تَتَابَعَ النَّاسُ حَتَّى رَأَيْتُ كَوْمَيْنِ مِنْ طَعَامٍ وَثِيَابٍ حَتَّى رَأَيْتُ وَجْهَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ يَتَهَلَّلُ كَأَنَّهُ مُذْهَبَةٌ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ سَنَّ فِي ٱلإِسْلَامِ سُنَّةً حَسَنَةً فَلَهُ أَجْرُهَا وَأَجْرُ مَنْ عَمِلَ بِهَا بَعْدَهُ مِنْ غَيْرِ أَنْ يَنْقُصَ مِنْ أُجُورِهِمْ شَيْءٌ وَمَنْ سَنَّ فِي ٱلإِسْلَامِ سُنَّةً سَيِّئَةً كَانَ عَلَيْهِ

1 Furqan, 25/74.
2 Enbiya, 21/73.

وِزْرُهَا وَوِزْرُ مَنْ عَمِلَ بِهَا مِنْ بَعْدِهِ مِنْ غَيْرِ أَنْ يَنْقُصَ مِنْ أَوْزَارِهِمْ شَيْءٌ) رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

171-Ji Ebû 'Emr Cerîrê kurê 'Ebdullah (r.) hatiye rîwayetkirin,got: Rojekê serê sibehê em digel Pêxemberê Xwedê (s.) rûniştîbûn. Me dît ku birek mirovên xas û tazî hatin cem Resûlê Xwedê. 'Ebayek ji hiriyê hatibû raçandin nîva wî de qûlkirî wergirtibûn, şûrên wan jî di destên wan de bûn û temam jî Mûderî bûn (ji qebîlên Muderiyan bûn). Vêca rûyê Resûle Xwedê ji ber halê wan yê feqîr û belengaziyê qulibî. Çû mala xwe, paşê vegeriya hat emrê Bilal kir. Bilal bang da û qamet kir. Resûlê Xwedê nimêja (nîvro) kir. Paşê dest bi axaftinê kir û got: *"Gelî mirovan! Hûn ji wî Rebbê xwe bitirsin ku hûn ji yek nefsê xulîqandiye (ji Adem).* Ta dawiya ayetê *"Bêşik Xwedê çavdêrê we ye"*[1] xwend û ew ayeta di dûmahiya sûretê Heşr de jî xwend: *"Ey kesên ku xwedanîman, hûn ji Xwedê bitirsin. Bila her nefs binêre kanî ji bona sibehê (qiyametê) çi hazir kiriyê."*[2] Bila mirov ji dînarê xwe, ji dirhemê xwe, ji cilê xwe, saek (çar kulm) ji genimê xwe, sa'ek ji xurmeyê xwe sedekqe bide." Heta got: "Çendan bi qetek xurme be." Li ser vê gotina Resûlê Xwedê (s.) mirovekî kîsek anî kefa destê wî ne dikarî bigre. Paşê jî her kesî li gora quweta xwe sedeqe anîn heta min du kom ji xwarinê dît û du kom ji cilani û min dît rûyê Resûlê Xwedê (s.) wekî qetek zêr ronahî da. Vêca Resûlê Ekrem (s.) got: "Kesê rêyek taze di Îslamê de damezirîne/îcad bike, li gor dîn ji wî re xêra wî heye û xêra wan kesê ku piştî wî bi wê rêyê 'emel bike bêkêmbûna xêra wan kesan. Û çi kesê di Îslamê de rêyek xerab/ne li gor dînê Îslamê derxe gunehê wê li ser wî ye û gunehên wan kesên ku li ser wê rê diçin jî li ser wî ye bêkêmbûna gunehên wan kesan." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٧٢ - عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (لَيْسَ مِنْ نَفْسٍ تُقْتَلُ ظُلْمًا إِلَّا كَانَ عَلَى ابْنِ آدَمَ الأَوَّلِ كِفْلٌ مِنْ دِمَائِهَا، لأَنَّهُ كَانَ أَوَّلَ مَنْ سَنَّ الْقَتْلَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

172- Ji Îbn Mes'ûd (r.) Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Her kesê bi zulmî bê kuştin wê parek ji gunehê xûna wî bikeve li ser kurê Adem yê ewwel. Çunkî ew bû yê ku pêşyê de kuştin peyda kiriye." *Muslim û Buxarî ev hedîs riwayet kirine.*

1 Nîsa, 4/1.
2 Heşr, 59/18.

  

## الدَّلاَلة عَلَى خَيْرٍ وَالدُّعَاء إلَى هُدى أَو ضَلاَلَة

## RÊNÎŞANDANA XÊRÊ Û DAWETKIRINA BI BAL HÎDAYETÊ VE Û YAN BI BALŞAŞÎTIYÊ VE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَادْعُ إِلَى رَبِّكَ﴾

"Û tu (însanan) bi bal Rebbê xwe ve dawet bike."[1]

﴿أُدْعُ إِلَى سَبِيلِ رَبِّكَ بِالْحِكْمَةِ وَالْمَوْعِظَةِ الْحَسَنَةِ﴾

"Bi hîkmet û bi wa'z û nesîheta taze (însanan) bi bal rêya Rebbê xwe ve dawet bike."[2]

﴿وَتَعَاوَنُوا عَلَى الْبِرِّ وَالتَّقْوَى﴾

Di xêr û di teqwatiyê de arîkariya hevdu bikin."[3]

﴿وَلْتَكُنْ مِنْكُمْ أُمَّةٌ يَدْعُونَ إِلَى الْخَيْرِ﴾

"Bila ji we cema'etek hebe ku (însanan) bi bal xêrê ve dawet bikin.[4]

١٧٣- عَنْ أَبِى مَسْعُودٍ عُقْبَةَ بْنِ عَمْرٍ الأَنْصَارِىِّ البدري ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (مَنْ دَلَّ عَلَى خَيْرٍ فَلَهُ مِثْلُ أَجْرِ فَاعِلِهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

173- Ji Ebû Mes'ûd 'Ûqbe kurê 'Emrê Bedrî yê Ensarî (r.) hatiye rîwayetkirin. Wî got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê rêya xêrê nîşanî yekî bide, wekî xêra kesê ew îş kiriye, xêr ji wî re jî heye." *Muslim riwayet kiriye.*

١٧٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ دَعَا إِلَى هُدًى كَانَ لَهُ مِنَ الأَجْرِ مِثْلُ أُجُورِ مَنْ تَبِعَهُ لَا يَنْقُصُ ذَلِكَ مِنْ أُجُورِهِمْ شَيْئاً، وَمَنْ دَعَا إِلَى ضَلَالَةٍ كَانَ عَلَيْهِ مِنَ الإِثْمِ مِثْلُ آثَامِ مَنْ تَبِعَهُ لَا يَنْقُصُ ذَلِكَ مِنْ آثَامِهِمْ شَيْئاً). رَوَاهُ مُسْلِم.

1 Qeses, 28/87.
2 Nehl, 16/125.
3 Ma'îde, 5/2.
4 Alî 'Îmran, 3/104.

174- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê rêya hîdayetê/başiyê bide nîşandan jê re wekî xêra wanên li pey çûne heye û ji xêra wan kesan jî tiştekî kêm nake; û kesê rêya xerabiyê bide nîşandan, hindî gunehên wan kesên ku li pey çûne guneh ji wî re heye. Ew gunehên ketî li ser wî gunehên wan kesan jî kêm nake." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٧٥- عَنْ أَبِي الْعَبَّاسِ سَهْلِ بْنُ سَعْدٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ يَوْمَ خَيْبَرَ (لأُعْطِيَنَّ هَذِهِ الرَّايَةَ غَداً رَجُلاً يَفْتَحُ اللَّهُ عَلَى يَدَيْهِ يُحِبُّ اللَّهَ وَرَسُولَهُ وَيُحِبُّهُ اللَّهُ وَرَسُولُهُ). قَالَ: فَبَاتَ النَّاسُ يَدُوكُونَ لَيْلَتَهُمْ أَيُّهُمْ يُعْطَاهَا. قَالَ: فَلَمَّا أَصْبَحَ النَّاسُ غَدَوْا عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ كُلُّهُمْ يَرْجُونَ أَنْ يُعْطَاهَا. فَقَالَ: (أَيْنَ عَلِيُّ بْنُ أَبِي طَالِبٍ) فَقَالُوا هُوَ يَا رَسُولَ اللَّهِ يَشْتَكِي عَيْنَيْهِ، قَالَ فَأَرْسِلُوا إِلَيْهِ، فَأُتِيَ بِهِ فَبَصَقَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فِي عَيْنَيْهِ وَدَعَا لَهُ فَبَرَأَ حَتَّى كَأَنْ لَمْ يَكُنْ بِهِ وَجَعٌ، فَأَعْطَاهُ الرَّايَةَ، فَقَالَ عَلِيٌّ يَا رَسُولَ اللَّهِ: أُقَاتِلُهُمْ حَتَّى يَكُونُوا مِثْلَنَا فَقَالَ: (انْفُذْ عَلَى رِسْلِكَ حَتَّى تَنْزِلَ بِسَاحَتِهِمْ ثُمَّ ادْعُهُمْ إِلَى الإِسْلَامِ وَأَخْبِرْهُمْ بِمَا يَجِبُ عَلَيْهِمْ مِنْ حَقِّ اللَّهِ فِيهِ، فَوَاللَّهِ لأَنْ يَهْدِيَ اللَّهُ بِكَ رَجُلاً وَاحِدًا خَيْرٌ لَكَ مِنْ أَنْ يَكُونَ لَكَ حُمْرُ النَّعَمِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

175- Ji Ebû 'Ebbas Sehlê Kurê Se'd (r.) hatiye rîwayetkirin. Bêşik Pêxemberê Xwedê (s.) di roja Xeyberê de (herba Xeybere de) got: "Sond dixwim bi Xwedê ku ezê sibê alayê bidime mirovekî ku Xwedê te'ala li ser destê wî Xeyberê fetih bike. Ew mirov jî ji Xwedê û ji Resûlê wî hez dike, Xwedê û Resûlê wî jî ji wî hez dikin." Vêca mirovan şeva xwe bi vî şeklî derbas kirin ka Resûlê Xwedê wê alayê bide kê?

Zemanê ku li wan bû sibeh, sehabî li dora Pêxemberê Xwedê (s.) civiyan her kesî dixwest ku ala jê re bê dayin. Vêca Resûlê Ekrem got: "'Elî kurê Ebû Talib kanê?" Hate gotin: "Ya Resûlê Xwedê çavên wî kul bûne." Got: "Bişînin pey wî bila bê." Ew dane anîn. Pêxemberê Xwedê (s.) tifa xwe ya mubarek kire çavên wî û jê re dua kir, ew jî pak bû. Her wekî êş nedîtibû. Vêca Resûlê Xwedê ala da. 'Elî (r.) got: "Ya Resûlê Xwedê, ez digel wan şer bikim ta ku bibin wekî me. Wî got: "Tu giran giran here, heta tu gihîştî cem wan. Wan dawetî Îslamê bike. Tiştê li ser wan wacib, ji huqûqên

  

Xwedê ‘ezze we celle tu ji wan re bêje. Ez sond dixwim bi Xwedê, eger Xwedê li ser destê te mirovekî raste rê bike, ji bo te ji devehê sor xêrtir e. "*Muslim û Buxarî riwayet kirine.*

١٧٦- عَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ فَتًى مِنْ أَسْلَمَ قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنِّي أُرِيدُ الْغَزْوَ وَلَيْسَ مَعِي مَا أَتَجَهَّزُ بِهِ، قَالَ: (ائْتِ فُلَاناً فَإِنَّهُ قَدْ كَانَ تَجَهَّزَ فَمَرِضَ) فَأَتَاهُ فَقَالَ: إِنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يُقْرِئُكَ السَّلَامَ وَيَقُولُ: أَعْطِنِي الَّذِي تَجَهَّزْتَ بِهِ، قَالَ: يَا فُلَانَةُ أَعْطِيهِ الَّذِي تَجَهَّزْتُ بِهِ وَلَا تَحْبِسِي مِنْهُ شَيْئًا فَوَاللَّهِ لَا تَحْبِسِينَ مِنْهُ شَيْئاً، فَيُبَارَكَ لَنَا فِيهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

176- Ji Enes (r.), ciwanekî ji qebîla Eslem got: Ya Resûlê Xwedê! Ez dixwazim herime herbê, lêbelê îmkanê min yên herbê tunînin. Pêxemberê Xwedê (s.) jê re got: “Here cem filankesî, ewî karê xwe ji bona cîhadê kiribû. Lêbelê nesax bû. Vêca ew ciwan çû cem wî kesî û got: Resûlê Xwedê (s.) selama dike û dibêje, bila haziriya xwe ya ku ji bona herbê te mîn kiriye bide te. Vêca wî mirovî ji jinika xwe re got: “Ya filan kesê, tu techîzatên min yên herbê bide vî ciwanî û tu tiştekî jê kêm nehêle. Ez bi Xwedê te‘ala sond dixwim tu tiştekî jê nehêlî, wê Xwedê ji me re bi bereket bike.” *Muslim riwayet kiriye.*

## بَابُ التَّعَاوُنِ عَلَى البِرِّ وَالتَّقْوَى

## ARÎKARIYA LI SER XÊRÊ Û LI SER TEQWAYÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَتَعَاوَنُوا عَلَى الْبِرِّ وَالتَّقْوَى﴾

“Di xêrê û di teqwatiyê de arikariya hevdu bikin.”[1]

﴿وَالْعَصْرِ ۝ إِنَّ الْإِنْسَانَ لَفِي خُسْرٍ ۝ إِلَّا الَّذِينَ آمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ وَتَوَاصَوْا بِالْحَقِّ وَتَوَاصَوْا بِالصَّبْرِ﴾

قَالَ الإِمَامُ الشَّافِعِيُّ رَحِمَهُ الله كَلاماً معْنَاهُ: إِنَّ النَّاسَ أَوْ أَكْثَرُهُمْ فِي غَفْلَةٍ عَنْ تَدَبُّرِ هذِهِ السُّورَة.

1 Ma’îde, 5/2.

*"Ez bi 'esrê sond dixwim, temamê însanan di ziyanê de ne. Bes ew kesên bawerî anîn, 'emelên baş kirin û şîreta sebrê û şîreta heqiyê li hevdu kirin ji vê der in."*[1]

Îmamê Şafi'î (r.) li ser vî sûretî weha gotiye: "Gelek însan ji tefekkura vî sûretî xafil in/li ser maneya vî sûretî nafikirin."

١٧٧ - عَنْ أَبِي عَبْدِ الرَّحْمنِ زَيْدِ بْنِ خَالِدِ الْجُهَنِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (مَنْ جَهَّزَ غَازِيًا فِي سَبِيلِ اللَّهِ فَقَدْ غَزَا، وَمَنْ خَلَفَ غَازِيًا فِي أَهْلِهِ بِخَيْرٍ فَقَدْ غَزَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

177- Ji Ebû 'Ebdirrehman Zeyd kurê Xalidê Cuhenî (r.) hatiye rîwayetkirin got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Her kesê lewazimatê leşkerekî di rêya Xwedê de pêk bîne, her wekî wî bi xwe cîhad kiribe ye. Û çi kesê xwedaniyê li 'eyalê mucahidekî bike, her wekî ew jî çûyê cîhadê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٧٨ - عَنْ أَبِي سَعِيدِ الْخُدْرِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ بَعَثَ بَعْثًا إِلَى بَنِي لَحْيَانَ مِنْ هُذَيْلٍ فَقَالَ: (لِيَنْبَعِثْ مِنْ كُلِّ رَجُلَيْنِ أَحَدُهُمَا وَالأَجْرُ بَيْنَهُمَا). رَوَاهُ مُسْلِم.

178- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin, bêşik Pêxemberê Xwedê (s.) ji qebîla Benî Lehyan ji Huzeyliyan xwest ku ji bona cîhadê 'esker bişînin. Vêca got: "Bila ji du mirovan mirovek were cîhadê û yek jî malê bila li bimîne. Xêra cîhadê wê ji her dukan re be." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٧٩ - عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ لَقِيَ رَكْبًا بِالرَّوْحَاءِ فَقَالَ: (مَنِ الْقَوْمُ؟) قَالُوا: الْمُسْلِمُونَ، فَقَالُوا: مَنْ أَنْتَ؟ قَالَ: (رَسُولُ اللَّهِ) فَرَفَعَتْ إِلَيْهِ امْرَأَةٌ صَبِيّاً فَقَالَتْ: أَلِهَذَا حَجٌّ؟ قَالَ: (نَعَمْ وَلَكِ أَجْرٌ). رَوَاهُ مُسْلِم.

179- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin. Bêşik Pêxemberê Xwedê (s.) li Revhayê rastî cema'eteke sîwarî hat. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Hûn çi kes in?" Gotin: "Em misilman in." Wan gotin: "Tu çi kesî?" Got: "Resûlê Xwedê me." Jinekê zarokeka xwe hilda jor û got: "Ji bo vî piçûkî hec sehîh e?" Got: "Belê, ji te re jî xêr heye." *Muslim rîwayet kiriye.*

1 'Esr, 103/1-2-3.

١٨٠- عَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِي ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (الْخَازِنُ الْمُسْلِمُ الأَمِينُ الَّذِي يُنْفِذُ مَا أُمِرَ بِهِ فَيُعْطِيهِ كَامِلاً مُوَفَّرًا طَيِّبًا بِهِ نَفْسُهُ فَيَدْفَعُهُ إِلَى الَّذِي أُمِرَ لَهُ بِهِ أَحَدُ الْمُتَصَدِّقَيْنِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

180- Ji Ebû Mûsayê Eş'arî (r.) hatiye rîwayetkirin, Pêxemberê Xwedê (s.) bêşik wî got: "Xeznedarê misilmanê emîn ew e, yê ku wezîfa xwe pêk tîne û bêkêmahî dide, yê xwedanheq û bi xweşiya nefsa xwe dide wî." *Muslim û Buxarî rîwayet kirine.*

## بَابُ النَّصِيحَةِ
## NESÎHET Û ŞÎRETKIRIN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿إِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ إِخْوَةٌ﴾

"Bêşik bes bawermend birayên hevdu ne."[1]

﴿وَأَنْصَحَ لَكُمْ﴾

Xwedê te'ala hikayetê ji Nûh (s.) dike û ferman dike: "Ez ji bona we xêrxwaz im."[2]

﴿وَأَنَا لَكُمْ نَاصِحٌ أَمِينٌ﴾

Hikayeta ji Hûd (s.) jî wiha dike: "Ez ji bo we xêrxwazekî emîn im."[3]

١٨١- عَنْ أَبِي رُقَيَّةَ تَمِيمِ الدَّارِيِّ بن أَوْسِ الدَّارِي ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (الدِّينُ النَّصِيحَةُ) قُلْنَا: لِمَنْ؟ قَالَ: (لِلَّهِ وَلِكِتَابِهِ وَلِرَسُولِهِ وَلأَئِمَّةِ الْمُسْلِمِينَ وَعَامَّتِهِمْ). رَوَاهُ مُسْلِمْ.

181- Ji Ebû Ruqeyyete Temîm kurê Ewsê Darî (r.) hatiye rîwayetkirin: Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Dîn nesîhet e/bingeha wê li ser nesîhet û xêrxwaziyê ye. Me got: Ji kî re nesîhet e? Got: "Ji Xwedê re, û ji kitêba wî re û ji Resûlê wî re û ji pêşîvanên misilmanan re û ji tevê mi-

1 Hucurat, 49/10.
2 E'raf, 7/62.
3 E'raf, 7/68.

silmanan re." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٢- عَنْ جَرِيرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: بَايَعْتُ رَسُولَ الله ﷺ عَلَى إِقَامِ الصَّلَاةِ، وَإِيتَاءِ الزَّكَاةِ، وَالنُّصْحِ لِكُلِّ مُسْلِمٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

182- Ji Cerîr kurê 'Ebdullah, got: Me li ser kirina nimêjê û li ser dayina zikatê û li ser rê nîşandayina tiştê baş ji her misilmanî re ehd û peyman da Pêxemberê Xwedê (s.). *Buxarî û Muslim rîwayet kirine*

١٨٣- عَنْ أَنَسٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَا يُؤْمِنُ أَحَدُكُمْ حَتَّى يُحِبَّ لِأَخِيهِ مَا يُحِبُّ لِنَفْسِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

183- Ji Enes hatiye rîwayetkirin (r.), bêşik Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Yek ji we heta ku wê tişta ji xwe re dixwaze ji birayê xwe re jî nexwaze ewî bawerî neaniye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ الأَمْرِ بِالْمَعْرُوفِ وَالنَّهِي عَنِ الْمُنْكَرِ

## EMIRKIRINA TIŞTÊ BAŞ Û RÊNEDANA KIRINA TIŞTÊN NEBAŞ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَلْتَكُنْ مِنْكُمْ أُمَّةٌ يَدْعُونَ إِلَى الْخَيْرِ وَيَأْمُرُونَ بِالْمَعْرُوفِ وَيَنْهَوْنَ عَنِ الْمُنْكَرِ وَأُوْلَئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ﴾

"Bila ji we cema'etek ku gazî xêrê bikin, emrê bi qenciyê û men'a ji neqenciyê bikin hebe. Her ew in yên serfîraz."[1]

﴿كُنْتُمْ خَيْرَ أُمَّةٍ أُخْرِجَتْ لِلنَّاسِ تَأْمُرُون بِالْمَعْرُوفِ وَتَنْهَوْنَ عَنِ الْمُنْكَرِ﴾

"Hûn –ummeta Muhemmed (s.)– baştirînê ummetan e ku ji însanan re hatin derxistin. Çunkî hûn fermana qenciyê dikin û neqenciyê qedexe dikin."[2]

﴿خُذِ الْعَفْو وَأمُر بِالْعُرْفِ وَأَعْرِضْ عَنِ الْجَاهِلِينَ﴾

"(Ey Muhemmed) Tu 'efûkirinê ji xwe re bigre û berê xwe ji cahilan/

1 Alî 'Îmran, 3/104.
2 Alî 'Îmran, 3/110.

ji nezanan vegerîne."[1]

﴿وَالْمُؤْمِنُونَ وَالْمُؤْمِنَاتُ بَعْضُهُمْ أَوْلِيَاءُ بَعْضٍ يَأْمُرُونَ بِالْمَعْرُوفِ وَيَنْهَوْنَ عَنِ الْمُنْكَرِ﴾

"Mu'minên mêr û mu'minên jin ew bi xwe arîkarên hevdu ne, fermana qenciyê dikin û neqenciyê qedexe dikin."[2]

﴿لُعِنَ الَّذِينَ كَفَرُوا مِنْ بَنِي إِسْرَائِيلَ عَلَى لِسَانِ دَاوُودَ وَعِيسَى بْنِ مَرْيَمَ ذَلِكَ بِمَا عَصَوْا وَكَانُوا يَعْتَدُونَ ۞ كَانُوا لَا يَتَنَاهَوْنَ عَنْ مُنْكَرٍ فَعَلُوهُ لَبِئْسَ مَا كَانُوا يَفْعَلُونَ﴾

"Ew kesên ji Benî Îsraîliyan înkar kirin, ji devê Dawûd û Îsayê kurê Meryemê hatine lanetkirin. Lewra wan gunehkarî kiribûn û heddê xwe derbas kiribûn, digel vê tiştên xerab li hev qedexe nedikirin. Çi pîs e ew tiştê ku wan dikir."[3]

﴿وَقُلِ الْحَقُّ مِنْ رَبِّكُمْ فَمَنْ شَاءَ فَلْيُؤْمِنْ وَمَنْ شَاءَ فَلْيَكْفُرْ﴾

"(Ya Muhemmed!) Bêje heq ji Rebbê we ye. Vêca kî dixwaze bila îmanê bîne û kî dixwaze bila înkar bike."[4]

﴿فَاصْدَعْ بِمَا تُؤْمَرُ﴾

"Tişta tu pê têy emirkirin eşkere bike."[5]

﴿أَنْجَيْنَا الَّذِينَ يَنْهَوْنَ عَنِ السُّوءِ وَأَخَذْنَا الَّذِينَ ظَلَمُوا بِعَذَابٍ بَئِيسٍ بِمَا كَانُوا يَفْسُقُونَ﴾ الأعراف ١٦٥

"Me ew kesên men'a xerabiyê kirin xelas kirin û me ewên zilm kirin bi sedem fisqa wan bi 'ezabek gelekî bi êş girtin."[6]

١٨٤ عَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ رَأَى مِنْكُمْ مُنْكَرًا فَلْيُغَيِّرْهُ بِيَدِهِ، فَإِنْ لَمْ يَسْتَطِعْ فَبِلِسَانِهِ، فَإِنْ لَمْ يَسْتَطِعْ فَبِقَلْبِهِ وَذَلِكَ أَضْعَفُ الْإِيمَانِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

184- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.) rîwayet bûye, got: Min ji Resûlê Xwedê

1 E'raf, 7/199.
2 Tewbe, 9/71.
3 Maîde, 5/78-79.
4 Kehf, 18/29.
5 Hîcr, 15/94.
6 E'raf, 7/165.

(s.) bihîstiye digot: "Kesê ji we tiştek neqenc dît bila ewî bi destê xwe rake. Eger bi destê xwe nekarî rake bila bi zimanê xwe rake û eger bi zimanê xwe jî nekarê rake bila bi qelbê xwe –yanî pê ne razî be– ew jî ze'îftirê derecên îmanê ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَا مِنْ نَبِيٍّ بَعَثَهُ اللَّهُ فِي أُمَّةٍ قَبْلِي إِلَّا كَانَ لَهُ مِنْ أُمَّتِهِ حَوَارِيُّونَ وَأَصْحَابٌ يَأْخُذُونَ بِسُنَّتِهِ وَيَقْتَدُونَ بِأَمْرِهِ، ثُمَّ إِنَّهَا تَخْلُفُ مِنْ بَعْدِهِمْ خُلُوفٌ يَقُولُونَ مَا لَا يَفْعَلُونَ وَيَفْعَلُونَ مَا لَا يُؤْمَرُونَ، فَمَنْ جَاهَدَهُمْ بِيَدِهِ فَهُوَ مُؤْمِنٌ، وَمَنْ جَاهَدَهُمْ بِلِسَانِهِ فَهُوَ مُؤْمِنٌ، وَمَنْ جَاهَدَهُمْ بِقَلْبِهِ فَهُوَ مُؤْمِنٌ، وَلَيْسَ وَرَاءَ ذَلِكَ مِنَ الإِيمَانِ حَبَّةُ خَرْدَلٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

185- Ji 'Ebdullah kurê Mes'ûd (r.) Resûlê Xwedê gotiye: "Bêguman çi pêxemberê ku pêşiya min ji ummetekê re hatibe şandin, mutleqa heval û destûbirayên wî yên ku bi rêya wî digirtin û li pey emrê wî diçûn hebûn. Paşê jî piştî wan re hindek hatin dibêjin, lêbelê li gor gotina xwe nakin û tiştê emrê wan pê nehatiye kirin dikin. Vêca kesê bi destê xwe digel wan cîhadê bike ew mu'min e û kesê bi zimanê xwe digel wan cîhadê bike, ew kes mu'min e û her kesê bi qelbê xwe digel wan cîhadê bike ew kes dîsa mu'min e. Piştî vê bi qas misqala îmanê digel wî çunîne." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٦- عَنْ أَبِي الْوَلِيدِ عُبَادَةَ بْنِ الصَّامِتِ ﷺ قَالَ: بَايَعْنَا رَسُولُ الله ﷺ عَلَى السَّمْعِ وَالطَّاعَةِ فِي مَنْشَطِنَا وَمَكْرَهِنَا وَعُسْرِنَا وَيُسْرِنَا وَأَثَرَةً عَلَيْنَا، وَأَنْ لَا نُنَازِعَ الأَمْرَ أَهْلَهُ إِلَّا أَنْ تَرَوْا كُفْرًا بَوَاحًا عِنْدَكُمْ مِنَ اللَّهِ فِيهِ بُرْهَانٌ وَعَلَى أَنْ نَقُولَ بِالْحَقِّ أَيْنَمَا كُنَّا، لَا نَخَافُ فِي اللَّهِ لَوْمَةَ لَائِمٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

186- Ji ebû Welîd 'Ubada kurê Samit (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Me 'ehd û peymana guhdarîkirin û îta'etê da Pêxemberê Xwedê (s.). Di tengiyê de û di firehiyê de û di xweşiyê de û di nexweşiyê de û me soz dayê ku emê tercîha hevalên xwe bikin. Û me 'ehd û peyman da Resûlê Xwedê ku em li ber hukimdaran ranebin, bes ku hûn ji wan kufrek aşikar bibînin ji aliyê Xwedê ve di destê we de delîlek hebe hûn xwe pê bigrin. Û me soz da

  

Resûlê Xwedê ku em li kuderê bin emê heqiyê bêjin û di rêya Xwedê de ji 'îtaba/şermezarkirina çi kesî netirsin." *Muslim û Buxarî rîwayet kiriye.*

١٨٧ - عَنِ النُّعْمَانَ بْنَ بَشِيرٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَثَلُ الْقَائِمِ فِي حُدُودِ اللَّهِ وَالْوَاقِعِ فِيهَا كَمَثَلِ قَوْمٍ اسْتَهَمُوا عَلَى سَفِينَةٍ فَصَارَ بَعْضُهُمْ أَعْلَاهَا وَبَعْضُهُمْ أَسْفَلَهَا، فَكَانَ الَّذِينَ فِي أَسْفَلِهَا إِذَا اسْتَقَوْا مِنَ الْمَاءِ مَرُّوا عَلَى مَنْ فَوْقَهُمْ فَقَالُوا: لَوْ أَنَّا خَرَقْنَا فِي نَصِيبِنَا خَرْقًا وَلَمْ نُؤْذِ مَنْ فَوْقَنَا، فَإِنْ يَتْرُكُوهُمْ وَمَا أَرَادُوا هَلَكُوا جَمِيعاً، وَإِنْ أَخَذُوا عَلَى أَيْدِيهِمْ نَجَوْا وَنَجَوْا جَمِيعاً). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

187- Ji Nu'manê kurê Beşîr (r.) Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Mesela wan kesên ku hukmê Xwedê pêktînin û yên ku pêknaynin, wekî mesela wan kesan e ku di gemiyekê de peşk avêtine, hindek ketine qata ser û hindek ketine qata bin. Vêca ewên di qata bin, danê ku herin avê, lazim e li ser wan kesên li qata serî ne re derbas bibin. Ji xwe re gotin em dê bo çi hevalên xwe nerehet bikin? Emê li ciyê xwe de qûlekê vekin. Vêca eger (yên li jor) bihêlin ku ew wekî xwe bikin wê tev de helak bibin. Lêbelê heke nehêlin ku wisa bikin wê ew û yên dîtir tev de wê xelaş bibin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٨٨ - عَنْ أُمِّ الْمُؤْمِنِينَ أُمِّ سَلَمَةَ زَوْجِ النَّبِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: (إِنَّهُ يُسْتَعْمَلُ عَلَيْكُمْ أُمَرَاءُ فَتَعْرِفُونَ وَتُنْكِرُونَ، فَمَنْ كَرِهَ فَقَدْ بَرِئَ، وَمَنْ أَنْكَرَ فَقَدْ سَلِمَ وَلَكِنْ مَنْ رَضِيَ وَتَابَعَ) قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَلَا نُقَاتِلُهُمْ؟ قَالَ: (لَا، مَا أَقَامُوا فِيكُمُ الصَّلَاةَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

188- Ji Ummul-Mu'minîn Ummu Seleme pîreka Pêxember (s.) hatiye rîwayetkirin, Pêxember (s.) gotiye: "Wê hinek hukimdar bêne ser serê we. Hûnê tiştên baş û tiştên nebaş ji wan bibînin. Kesê karê wan li xwe xweş neynê, ew ji guneh dûr dibe, kesê karê wan red bike ew jî di silametiyê de dimîne. Lêbelê kesê ji karê wan razî be û li pey wan here... (ew na). Gotin: Ya Resûlê Xwedê! Ma em bi wan re şer nekin? Got: "Heta nimêjê bi we didin kirin bi wan re şer nekin."*Muslim rîwayet kiriye*

١٨٩ - عَنْ أُمِّ الْمُؤْمِنِينَ أُمِّ الْحَكَمِ زَيْنَبَ بِنْتِ جَحْشٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ دَخَلَ عَلَيْهَا

فَزِعًا يَقُولُ: (لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ، وَيْلٌ لِلْعَرَبِ مِنْ شَرٍّ قَدِ اقْتَرَبَ، فُتِحَ الْيَوْمَ مِنْ رَدْمِ يَأْجُوجَ وَمَأْجُوجَ مِثْلُ هَذِهِ) وَحَلَّقَ بِإِصْبَعَيْهِ الإِبْهَامِ وَالَّتِي تَلِيهَا، فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَفَنَهْلِكُ وَفِينَا الصَّالِحُونَ؟ قَالَ: (نَعَمْ، إِذَا كَثُرَ الْخُبْثُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

189- Ji dayika mu'minan Ummul-Hekem Zeyneb keça Cehş (r.) Bêşik Pêxemberê Xwedê (s.) bi tirs hate cem wê. Digot: "Weyl li halê Ereban! Şerrek nêzîk bûye. Seddê Ye'cûc û Me'cûcan ev qeder vebûye." Bi tiliya xwe ya şehadetê û bi tiliya xwe ya beranekê helqeyek çêkir. Min got: Ey Resûlê Xwedê! Em dê biçine helakê welhal hê di nav me dê mirovên baş hebin? Got: "Belê. Zemanê pîsatî gelek bû." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٩٠ - عَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِيَّاكُمْ وَالْجُلُوسَ عَلَى الطُّرُقَاتِ) فَقَالُوا: مَا لَنَا بُدٌّ إِنَّمَا هِيَ مَجَالِسُنَا نَتَحَدَّثُ فِيهَا، قَالَ: (فَإِذَا أَبَيْتُمْ إِلَّا الْمَجَالِسَ فَأَعْطُوا الطَّرِيقَ حَقَّهُ) قَالُوا: وَمَا حَقُّ الطَّرِيقِ؟ قَالَ: (غَضُّ الْبَصَرِ، وَكَفُّ الأَذَى، وَرَدُّ السَّلَامِ، وَأَمْرٌ بِالْمَعْرُوفِ، وَنَهْيٌ عَنِ الْمُنْكَرِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

190- Ji Ebî Se'îdê Xudrî (r.) Pêxemberê Xwedê (s.) got: Xwe ji rûniştina li ser rêyan dûr bikin. Sehabiya gotin: "Ya Resûlê Xwedê! Ma emê çilo xwe ji rêyan dûr bikin, em tenê di wan de dicivîn û bi hevdu re xeber didin. Resûlê Xwedê (s.) got: Wextê we îlla xwest hûn rûnin, wî çaxî heqê rê bidin." Gotin: "Ey Pêxemberê Xwedê! Heqê rê çi ye?" Got: "Çavgirtina ji nêrîna heramiye, nedayina zerarê ye, vedana selamê ye, emrê bi qenciyê û qedexekirina neqenciyê ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٩١ - عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ رَأَى خَاتَمًا مِنْ ذَهَبٍ فِي يَدِ رَجُلٍ، فَنَزَعَهُ فَطَرَحَهُ، وَقَالَ: (يَعْمِدُ أَحَدُكُمْ إِلَى جَمْرَةٍ مِنْ نَارٍ فَيَجْعَلُهَا فِي يَدِهِ) فَقِيلَ لِلرَّجُلِ بَعْدَ مَا ذَهَبَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: خُذْ خَاتِمَكَ انْتَفِعْ بِهِ، قَالَ: وَاللَّهِ لَا آخُذُهُ أَبَداً، وَقَدْ طَرَحَهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ). رَوَاهُ مُسْلِم.

191- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin, bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) dît gustîlek zêr di tiliya mirovekî de ye. Resûlê Xwedê ew gustîlk ji

tiliya wî mirovî derxist û avêt û wiha got: "Çawa yek ji we dirahêje pêloxek agir û dixe destê xwe?" Dema Pêxember ji wêdere çû, ji wî mirovî re hat gotin: "Wê gustîlka xwe wergire pê feydê bibîne." Got: "Na, wellahî piştî Resûlê Xwedê ew avêt, ez ebeden wê hilnadim." *Muslim riwayet kiriye.*

١٩٢- عَنْ أَبِي سَعِيدِ الْحَسَنِ الْبَصْرِيِّ أَنَّ عَائِذَ بْنَ عَمْرٍو ﷺ دَخَلَ عَلَى عُبَيْدِ اللَّهِ بْنِ زِيَادٍ فَقَالَ: أَيْ بُنَيَّ إِنِّي سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ شَرَّ الرِّعَاءِ الْحُطَمَةُ، فَإِيَّاكَ أَنْ تَكُونَ مِنْهُمْ) فَقَالَ لَهُ: اجْلِسْ فَإِنَّمَا أَنْتَ مِنْ نُخَالَةِ أَصْحَابِ مُحَمَّدٍ ﷺ فَقَالَ: وَهَلْ كَانَتْ لَهُمْ نُخَالَةٌ؟ إِنَّمَا كَانَتِ النُّخَالَةُ بَعْدَهُمْ وَفِي غَيْرِهِمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

192- Ji Ebû Se'îd Hesenê Besrî (r.) hatiye rîwayetkirin, bêşik 'A'izê kurê 'Emr (r.) hate cem 'Ebdullah kurê Ziyad û got: Kurê min! Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) guh lê bû digot: "Nebaştirînê hukimdaran ew e ku zilm û zordariyê dike. Vêca nebe ku tu bibî ji wan. 'Ebdullah kurê Ziyad ji 'A'izê kurê ؏Emr re got: Tu rûne. Tu sereşke/bermayî/kuzewa sehabiyên Muhemmed (s.) 'A'iz got: Ma qey ji sahabiyan kesek sereşke hebû? Mirovên sereşke piştî wan hatin û ji hinekê dîtir bûn. *Muslim riwayet kiriye.*

١٩٣- عَنْ حُذَيْفَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ لَتَأْمُرُنَّ بِالْمَعْرُوفِ وَلَتَنْهَوُنَّ عَنِ الْمُنْكَرِ، أَوْ لَيُوشِكَنَّ اللَّهُ أَنْ يَبْعَثَ عَلَيْكُمْ عِقَابًا مِنْهُ ثُمَّ تَدْعُونَهُ فَلَا يُسْتَجَابُ لَكُمْ).

رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

193- Ji Huzeyfe, sirdaşê Resûlullah (s.) hatiye rîwayetkirin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ez bi wî yê ku nefsa min bi qudreta wî ye sond dixwim hûn dê emrê bi qenciyê bikin û neqenciyê qedexe bikin û yan jî wê Xwedê di wextekî nêzîk de 'ezabekî bi ser we de rêke, paşê jî hûn dê gazî wî bikin/ jê re dua bikin bes dua we nayê qebûl kirin." *Tirmizî riwayet kiriye gotiye ev hedîs hesen e.*

١٩٤- عَنْ أَبِي سَعِيدِ الْخُدْرِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (أَفْضَلُ الْجِهَادِ كَلِمَةُ عَدْلٍ عِنْدَ سُلْطَانٍ جَائِرٍ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

194- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin Pêxemberê Xwedê (s.)

got: “Qenctirînê cîhadê, li cem hukimdarek zalim gotina heqiyê ye.” *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û gotine ev hedîs hesen e.*

١٩٥- عَنْ أَبِي عَبْدِ اللَّهِ طَارِقِ بْنِ شِهَابٍ الْبَجَلِيِّ ﷺ أَنَّ رَجُلاً سَأَلَ النَّبِيَّ ﷺ وَقَدْ وَضَعَ رِجْلَهُ فِي الْغَرْزِ: أَيُّ الْجِهَادِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: (كَلِمَةُ حَقٍّ عِنْدَ سُلْطَانٍ جَائِرٍ). رَوَاهُ النَّسَائِي.

195- Ji Ebî ‘Ebdullah Tariq kurê Şihabê Becelî (r.) hatiyê rîwayet kirin, bêşik mirovekî ji Pêxemberê Xwedê (s.) pirsî, welhal wî mirovî lingê xwe danîbû di zengûwahe spêda: Çi qismê cîhadê qenctir e? Resûlê Xwedê got: “Gotina heqiye li cem hukimdarekî zalim.” *Nesai rîwayet kiriye.*

١٩٦- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ أَوَّلَ مَا دَخَلَ النَّقْصُ عَلَى بَنِي إِسْرَائِيلَ أَنَّهُ كَانَ الرَّجُلُ يَلْقَى الرَّجُلَ فَيَقُولُ يَا هَذَا اتَّقِ اللَّهَ وَدَعْ مَا تَصْنَعُ فَإِنَّهُ لَا يَحِلُّ لَكَ، ثُمَّ يَلْقَاهُ مِنَ الْغَدِ فَلَا يَمْنَعُهُ ذَلِكَ أَنْ يَكُونَ أَكِيلَهُ وَشَرِيبَهُ وَقَعِيدَهُ، فَلَمَّا فَعَلُوا ذَلِكَ ضَرَبَ اللَّهُ قُلُوبَ بَعْضِهِمْ بِبَعْضٍ) ثُمَّ قَالَ ﴿لُعِنَ الَّذِينَ كَفَرُوا مِنْ بَنِي إِسْرَائِيلَ عَلَى لِسَانِ دَاوُدَ وَعِيسَى ابْنِ مَرْيَمَ﴾ إِلَى قَوْلِهِ (فَاسِقُونَ). ثُمَّ قَالَ: (كَلاَّ وَاللَّهِ لَتَأْمُرُنَّ بِالْمَعْرُوفِ، وَلَتَنْهَوُنَّ عَنِ الْمُنْكَرِ وَلَتَأْخُذُنَّ عَلَى يَدَيِ الظَّالِمِ، وَلَتَأْطُرُنَّهُ عَلَى الْحَقِّ أَطْراً، وَلَتَقْصُرُنَّهُ عَلَى الْحَقِّ قَصْرًا أَوْ لَيَضْرِبَنَّ اللَّهُ بِقُلُوبِ بَعْضِكُمْ عَلَى بَعْضٍ، ثُمَّ لَيَلْعَنَنَّكُمْ كَمَا لَعَنَهُمْ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي.

هَذَا لَفْظ أَبِي دَاوود، وَلَفْظُ التِّرْمِذِيِّ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَمَّا وَقَعَتْ بَنُو إِسْرَائِيلَ فِي الْمَعَاصِي نَهَتْهُمْ عُلَمَاؤُهُمْ فَلَمْ يَنْتَهُوا، فَجَالَسُوهُمْ فِي مَجَالِسِهِمْ وَوَاكَلُوهُمْ وَشَارَبُوهُمْ، فَضَرَبَ اللَّهُ قُلُوبَ بَعْضِهِمْ بِبَعْضٍ، وَلَعَنَهُمْ (عَلَى لِسَانِ دَاوُدَ وَعِيسَى ابْنِ مَرْيَمَ ذَلِكَ بِمَا عَصَوْا وَكَانُوا يَعْتَدُونَ) فَجَلَسَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَكَانَ مُتَّكِئًا فَقَالَ: (لَا وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ حَتَّى تَأْطُرُوهُمْ عَلَى الْحَقِّ أَطْراً)

196- Ji ‘Ebdullah kurê Mes‘ûd (r.) hatiye rîwayetkirin, Pêxemberê Xwedê

(s.) got: "Sedemê pêşîn ku xerabî û kêmahî kete di nav Benî Îsraîlyan de eva bû: Mirovek ji wan lîqayê mirovekî dibû û jê re digot: Ey mirov tu ji Xwedê bitirse vê şixûla xwe ya nebaş biterikîne. Çunkî ew ji bona te helal nîne. Sibeha dîtir cardî lîqayî wî dihat pê re dixwar û vedixwar û radibû û rûdinişt. Vêca zemanê wan wisan kirin Xwedê te'ala dilên wan kire wekî hevdu, bûn heval. Paşê Resûlê Xwedê (s.) ev ayet xwend: *"Ew kesên ji Benî Îsraîliyan înkar kirin, ji devê Dawûd û Îsayê kurê Meryemê hatine lanetkirin. Lewra wan gunehkarî kiribûn û heddê xwe derbas kiribûn, digel vê nehya tiştên xerab li hevdu nedikirin. Çi pîs e ew tiştê ku wan dikir. Te gelek ji wan didît ku wê digel wan kesên kafir bûne dost. Ew tişta nefsa wan kiriye çiqas tiştekî nebaş bû. Eger wan bawerî bi Xwedê, bi Muhemmed û bi Qur'anê bianiyana, wê kafir ji bo xwe nekirana arîkar/dost. Belê zehfê wan fasiq in."*[1] Dûre Pêxember (s.) ferman kir: "Naxêr! Ez bi Xwedê sond dixwim yan dê hûn emrê bi qenciyê bikin û hûn dê neqenciyê nehî bikin û hûn dê destê zalimî ji zilmê rakin û wî li ser heqiyê bidine rawestandin (hûn dê heqiyê pê bidine qebûl kirin) û yan jî wê Xwedê te'ala dilê we bike wekî hev paşê jî wê Xwedê lanetê li we bîne wekî lanet li wan anî." *Ebû Dawûdî û Tirmizî rîwayet kirine.*

Ev lefzê Ebû Dawûd e: Lefzê Tirmizî jî eva ye: Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Zemanê Benî Îsraîlî ketine gunehan, 'alimên wan bi devê xwe nehya wan ji gunehan kirin. Lêbelê wan terka gunehan nekirin. Vêca 'alimên wan digel wan rûniştin û digel wan xwarin û digel wan vexwarin. Li ser vê yekê Xwedê qelbê wan wekî hevdu lêkirin li ser zimanê Dawûd û li ser zimanê Îsayê kurê Meryemê lanet li wan barand. Bi sebeb ku wan bêemriya Xwedê dikirin û ji heddê xwe derdiketin. Pêxember (s.) paldayîbû vêca rûnişt û halo got: Naxêr ez bi wî yê ku nefsa min bi qudreta wî ye, sond dixwim hûn dê wan bînin ser heqiyê."

١٩٧- عَنْ أَبِي بَكْرٍ الصِّدِّيقِ ﷺ قَالَ: يَا أَيُّهَا النَّاسُ إِنَّكُمْ تَقْرَءُونَ هَذِهِ الْآيَةَ ﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا عَلَيْكُمْ أَنْفُسَكُمْ لَا يَضُرُّكُمْ مَنْ ضَلَّ إِذَا اهْتَدَيْتُمْ﴾ وَإِنِّي سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ النَّاسَ إِذَا رَأَوُا الظَّالِمَ فَلَمْ يَأْخُذُوا عَلَى يَدَيْهِ أَوْشَكَ أَنْ يَعُمَّهُمُ اللَّهُ بِعِقَابٍ مِنْهُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي. وَالنَّسَائِي بِأَسَانِيد صَحِيحَة.

197- Ji Ebû Bekirê Siddîq (r.) got: Gelî însanan! Hûn vê ayetê dixwînin:

1 Ma'îde, 5/78-81.

*“Hûn li xwe binêrin ey xwedanîmanno! Ger hûn di rêya dirust de bimeşin ewên ku rêya xwe şaş kirin zerarê nadine we.”*[1] Ya rastî min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye digot: “Dema însanan yekî zalim dîtin û destê wî ji zilma wî nekişandin nêzîk e ku Xwedê te‘ala ji aliyê xwe de ‘ezabê li ser wan tevan de bibarîne.” *Ebû Dawûd û Tirmizî û Nesaî bi senedên sehîh rîwayet kirine.*

## بَابُ تَغْلِيظِ عقُوبَة مَنْ أَمَرَ بِمَعْرُوف أَو نَهَى عَنْ مُنْكَر وَخَالَفَ قَوْلَهُ فِعْلَهُ

## GIRANBÛNA ‘EZABÊ WÎ KESÊ KU EMRÊ ME‘RÛFÊ DIKE Û NEHYÊ MUNKERÎ JÎ DIKE LÊBELÊ GOTINA WÎ MUXALIFÊ KIRINA WÎ YE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿أَتَأْمُرُونَ النَّاسَ بِالْبِرِّ وَتَنْسَوْنَ أَنْفُسَكُمْ وَأَنْتُمْ تَتْلُونَ الْكِتَابَ أَفَلَا تَعْقِلُونَ﴾

“Ma hûn emre însanan bi qenciyê dikin lêbelê hûn xwe jibîr dikin û hûn kitêbê jî dixwînin. Ma hûn bi aqil nabin?”[2]

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا لِمَ تَقُولُونَ مَا لَا تَفْعَلُونَ كَبُرَ مَقْتاً عِنْدَ اللَّهِ اَنْ تَقُولُوا مَا لَا تَفْعَلُونَ﴾

“Gelî ewên bawerî anîne! Çira tiştî ku hûn nakin dibêjin? Axaftina hûn dibêjin û nakin, kerbê wê li cem Xwedê pirtir e.”[3]

﴿وَمَا أُرِيدُ أَنْ أُخَالِفَكُمْ إِلَى مَا أَنْهَاكُمْ عَنْهُ﴾

Xwedê te‘ala hîkayeta ji Şu‘eyb (e.) dike û wiha dibêje: “Naxwazim tiştê ku ez bi kiriya wê nehya we dikim, muxalefeta we bikim.”[4]

١٩٨ - عَنْ أَبِي زَيْد أُسَامَةَ بْنِ زَيْدِ بن حَارِثَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (يُؤْتَى بِالرَّجُلِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ فَيُلْقَى فِي النَّارِ، فَتَنْدَلِقُ أَقْتَابُ بَطْنِهِ فَيَدُورُ بِهَا كَمَا يَدُورُ الْحِمَارُ

1 Maîde, 5/105.
2 Beqere, 2/44.
3 Sef 61/2-3.
4 Hûd, 11/88.

بِالرَّحَى، فَيَجْتَمِعُ إِلَيْهِ أَهْلُ النَّارِ فَيَقُولُونَ: يَا فُلَانُ مَا لَكَ؟ أَلَمْ تَكُنْ تَأْمُرُ بِالْمَعْرُوفِ وَتَنْهَى عَنِ الْمُنْكَرِ؟ فَيَقُولُ: بَلَى قَدْ كُنْتُ آمُرُ بِالْمَعْرُوفِ وَلَا آتِيهِ) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

198- Ji Ebû Zeyd Usame kurê Zeydê kurê Harise (r.) rîwayet bûye, got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst digot: "Wê di roja qiyametê de mirov bên anîn û bên avêtin nav agirî de. Vêca dê roviyên wî ji zikê wî derbikevin û dê di wî halî de di êgir de wekî kerê aş digerîne li dora xwe bizivire. Vêca ehlê cehennemê wê li wî kom bibin û wê ji wî re bibêjin: Ev çi hale tu têdeyî? Ma qey te emrê bi qenciyê û nehya ji neqenciyê nedikir? Got: Belê min emrê bi qenciyê dikir, lêbelê min bi xwe nedikir." *Muslim û Buxarî rîwayet kirine.*

## بَابُ الأَمْرِ بِأَدَاءِ الأَمَانَةِ
## EMANET

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿إِنَّ اللَّهَ يَأْمُرُكُمْ أَنْ تُؤَدُّوا الأَمَانَاتِ إِلَى أَهْلِهَا﴾

"Xwedê bo we ferman dike ku hûn emanetan bidine ehlê wan"[1]

﴿إِنَّا عَرَضْنَا الأَمَانَةَ عَلَى السَّمَاوَاتِ وَالأَرْضِ وَالْجِبَالِ فَأَبَيْنَ أَنْ يَحْمِلْنَهَا وَأَشْفَقْنَ مِنْهَا وَحَمَلَهَا الإِنْسَانُ إِنَّهُ كَانَ ظَلُومًا جَهُولاً﴾

"Me emanet teklîfê erd û asîmanan kir wan xwe ji hilgirtinê paşvedan û ji hilgirtina wê tirsiyan û însanî (emanet) hilgirt. Bêşik ew gelek zalim û gelek nezan e."[2]

١٩٩ عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (آيَةُ الْمُنَافِقِ ثَلَاثٌ إِذَا: حَدَّثَ كَذَبَ، وَإِذَا وَعَدَ أَخْلَفَ، وَإِذَا اؤْتُمِنَ خَانَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: (وَإِنْ صَامَ وَصَلَّى وَزَعَمَ أَنَّهُ مُسْلِمٌ).

199-Ji Ebû Hureyre (r.), bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Nîşanê munafiqî sisê ne; dema axaft derew dike, zemanê soz de bi cih nayne, wextê

1 Nîsa, 4/58.
2 Ehzab, 33/72.

emanetek stand xiyanetê dike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetek dî de: "Çendan rojiyê bigire û nimêjê bike û bêje ez misilman im jî."

٢٠٠- عَنْ حُذَيْفَةَ بْنِ الْيَمَانِ قَالَ: حَدَّثَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ حَدِيثَيْنِ قَدْ رَأَيْتُ أَحَدَهُمَا وَأَنَا أَنْتَظِرُ الآخَرَ: حَدَّثَنَا أَنَّ الأَمَانَةَ نَزَلَتْ فِي جَذْرِ قُلُوبِ الرِّجَالِ، ثُمَّ عَلِمُوا مِنَ الْقُرْآنِ ثُمَّ عَلِمُوا مِنَ السُّنَّةِ، ثُمَّ حَدَّثَنَا عَنْ رَفْعِ الأَمَانَةِ قَالَ: (يَنَامُ الرَّجُلُ النَّوْمَةَ فَتُقْبَضُ الأَمَانَةُ مِنْ قَلْبِهِ فَيَظَلُّ أَثَرُهَا مِثْلَ أَثَرِ الْوَكْتِ، ثُمَّ يَنَامُ النَّوْمَةَ فَتُقْبَضُ الأَمَانَةُ فِي قَلْبِهِ فَيَبْقَى أَثَرُهَا مِثْلَ الْمَجْلِ كَجَمْرٍ دَحْرَجْتَهُ عَلَى رِجْلِكَ فَنَفِطَ فَتَرَاهُ مُنْتَبِراً وَلَيْسَ فِيهِ شَيْءٌ ثُمَّ أَخَذَ حَصَاةً فَدَحْرَجَهَا عَلَى رِجْلِهِ، فَيُصْبِحُ النَّاسُ يَتَبَايَعُونَ فَلَا يَكَادُ أَحَدٌ يُؤَدِّي الأَمَانَةَ حَتَّى يُقَالُ: إِنَّ فِي بَنِي فُلَانٍ رَجُلاً أَمِيناً، حَتَّى يُقَالُ لِلرَّجُلِ: مَا أَعْقَلَهُ وَمَا أَظْرَفَهُ وَمَا أَجْلَدَهُ وَمَا فِي قَلْبِهِ مِثْقَالُ حَبَّةِ خَرْدَلٍ مِنْ إِيمَانٍ، وَلَقَدْ أَتَى عَلَيَّ زَمَانٌ وَمَا أُبَالِي أَيُّكُمْ بَايَعْتُ، لَئِنْ كَانَ مُسْلِمًا لَيَرُدَّنَّهُ عَلَيَّ دِينُهُ، وَإِنْ كَانَ نَصْرَانِيّاً أَوْ يَهُودِيّاً لَيَرُدَّنَّهُ عَلَيَّ سَاعِيهِ، فَأَمَّا الْيَوْمَ فَمَا كُنْتُ أُبَايِعُ مِنْكُمْ إِلَّا فُلَاناً وَفُلَاناً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

200- Ji Huzeyfe kurê Yeman (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Resûlê Xwedê (s.) digel me du axaftin kirin, min yek dît û ez li hêviya ya dî mam. Got: "Emanet di binê qelbê mirovan de bi cih bûye. Paşê Qur'an hat wan ji Qur'anê û ji sunnetê fêrbûn/hînbûn. Paşê ji rabûna emanetî xeber da û got: "Wê zilamek carekê razê emanet wê ji qelbê wî bê rakirin, lêbelê wê dewsa wî bimîne. Dûre wê cardin razê wê emanet ji dilê were rakirin vê carê wekî peqikekê esera wê bimîne; wekî berek li ser lingê te ve gêrdibe/dixermişîne dibe peqik tu wî dibînî ku werimiye, lêbelê tiştek tê de çunîne." Pêxemberê Xwedê (s.) berek hilanî û li ser lingê xwe de gêrkir. Vêca wê însan werine wî halî ku mirovek tunebe ku li emanetî xwedan bike. Dê were wê derecê ta bê gotin di filan qebîlê de mirovek emîn heye. Heta wê ji zilamekî re bê gotin: Çend qeder qewî ye, çend qeder paqij e, çiqas bi aqil e, welhal bi qasî hebek xerdel îman di dilê wî de tunîne." Min zemanek wisa derbas kir min bi kîjanî ji we re dayin û standin kiriba ji min re ne

derd bû. Eger ew kes misilman bûya li gora dînê xwe dê heqê min bida min û eger file bûya û yan jî Cihû bûya wê weliyê wî dê heqê min jê wergirta. Belê, îro ez ji bilî filan û filanî zêdetir bi tu kesî re dayin û standinê nakim." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٠١- عَنْ حُذَيْفَةَ وَأَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَا: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (يَجْمَعُ اللَّهُ تَبَارَكَ وَتَعَالَى النَّاسَ فَيَقُومُ الْمُؤْمِنُونَ حَتَّى تُزْلَفَ لَهُمُ الْجَنَّةُ، فَيَأْتُونَ آدَمَ، فَيَقُولُونَ يَا أَبَانَا اسْتَفْتِحْ لَنَا الْجَنَّةَ، فَيَقُولُ: وَهَلْ أَخْرَجَكُمْ مِنَ الْجَنَّةِ إِلَّا خَطِيئَةُ أَبِيكُمْ؟ لَسْتُ بِصَاحِبِ ذَلِكَ اذْهَبُوا، إِلَى ابْنِي إِبْرَاهِيمَ خَلِيلِ اللَّهِ، فَيَأْتُونَ إِبْرَاهِيمَ، فَيَقُولُ: لَسْتُ بِصَاحِبِ ذَلِكَ، إِنَّمَا كُنْتُ خَلِيلاً مِنْ وَرَاءَ وَرَاءَ اعْمِدُوا إِلَى مُوسَى الَّذِي كَلَّمَهُ اللَّهُ تَكْلِيماً، فَيَأْتُونَ مُوسَى فَيَقُولُ: لَسْتُ بِصَاحِبِ ذَلِكَ، اذْهَبُوا إِلَى عِيسَى كَلِمَةِ اللَّهِ وَرُوحِهِ، فَيَقُولُ عِيسَى: لَسْتُ بِصَاحِبِ ذَلِكَ، فَيَأْتُونَ مُحَمَّداً ﷺ فَيَقُومُ فَيُؤْذَنُ لَهُ وَتُرْسَلُ الأَمَانَةُ وَالرَّحِمُ فَتَقُومَانِ جَنَبَتَي الصِّرَاطِ يَمِيناً وَشِمَالاً فَيَمُرُّ أَوَّلُكُمْ كَالْبَرْقِ) قُلْتُ: بِأَبِي أَنْتَ وَأُمِّي أَيُّ شَيْءٍ كَمَرِّ الْبَرْقِ؟ قَالَ: (أَلَمْ تَرَوْا كَيْفَ يَمُرُّ وَيَرْجِعُ فِي طَرْفَةِ عَيْنٍ ثُمَّ كَمَرِّ الرِّيحِ ثُمَّ كَمَرِّ الطَّيْرِ، وَأَشَدِّ الرِّجَالِ تَجْرِي بِهِمْ أَعْمَالُهُمْ، وَنَبِيُّكُمْ قَائِمٌ عَلَى الصِّرَاطِ يَقُولُ: رَبِّ سَلِّمْ سَلِّمْ حَتَّى تَعْجِزَ أَعْمَالُ الْعِبَادِ حَتَّى يَجِيءَ الرَّجُلُ فَلَا يَسْتَطِيعُ السَّيْرَ إِلَّا زَحْفًا قَالَ وَفِي حَافَتَي الصِّرَاطِ كَلَالِيبُ مُعَلَّقَةٌ مَأْمُورَةٌ بِأَخْذِ مَنْ أُمِرَتْ بِهِ، فَمَخْدُوشٌ نَاجٍ، وَمَكْدُوسٌ فِي النَّارِ) وَالَّذِي نَفْسُ أَبِي هُرَيْرَةَ بِيَدِهِ إِنَّ قَعْرَ جَهَنَّمَ لَسَبْعُونَ خَرِيفاً). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

201-Ji Huzeyfe û Ebû Hureyre (r.) rîwayet bûye ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wê Xwedê te'ala di roja mehşerê de însanan kom bike. Dê mu'min rabin ser piyan heta cennet ji wan re bê nêzîkkirin, dê herine bal Adem (e.) wê bibêjin: "Ey bavê me! Daxwaza vekirina cennetê ji bona me bike." Ew jî dê bêje: "Qey ji xeyrê xetayê/gunehê bavê we tiştekî dî hebû ku hûn ji cennetê derxistin? Ez ne ehlê vî karî me. Hûn herine cem kurê min Îbrahîmê dostê Xwedê." Resûlê Xwedê (s.) got: "Wê bên cem

Îbrahîm (e.). Îbrahîm (e.) dê bêje: "Ez dostbûm, lêbelê ji dûr û dûr bûm. Ez xwedanê vê derecê nînim. Hûn herine li cem Mûsa ewê ku bi Xwedê re axaftin kiriye." Vêca wê werine li cem Mûsa û dê bêjin: Ji bo me daxwaza vekirina cennetê ji Xwedê te'ala bike. Ew jî dê bibêje: "Ez jî xwedanê vê mertebê nînim. Hûn herine cem Îsa (e.) kelîma Xwedê û ruhê wî." Vêca wê herin li cem Îsa. Ew jî dê bibêje: "Ez xwedanê vî karî nînim." Vêca dê werine cem Muhemmed (s.), ew jî wê rabe, dê destûra wî were dayin, wê emanet û rehim/eqrabatî bêne şandin. Dê li layê Pira Sîratê yê çepê û yê rastê rawestin. Paşê jî qafila we ya pêşî dê wekî birûskê li ser pirê re derbas bibe. Min got: (Rawiyê hedîsê) Ya Pêxemberê Xwedê (s.)! Bav û dayika min gorî te bin, çi tişte wekî borandina birûskê? Got: "Ma hûn nabînin birûsk di miqdara ku hûn çavên xwe bigrin û vekinde diçe û tê." Paşê jî wekî bayê, paşê wekî teyran, paşê jî wekî mirovan peyatî bi lez diçin. Li gora kar û 'emelên xwe dimeşin. Pêxemberê we jî li ser Pira Sîratê rawestiyaye dibêje: Ya Reb silametiyê bide, silametiyê bide. Nîhayet kar û 'emelên 'îbadan ze'îf dibin, heta êdî mirov nikare bimeşe, bes li ser kulîmekên xwe dimeşin. Li her du terefên pirê ve çengel hene. Ew me'mûr in bi girtina wan kesên ku girtina wan ji aliyê Xwedê ve emir hatiye dayin. Ji ber vê yekê hindek birîndar dibin xelasdibin, hindek jî tên girtin û têne avêtin di agirî de." Ez bi wî sond dixwim ku nefsa Ebû Hureyre bi destê qudreta wî ye. Binê cehennemê bi mesafa heftê salan kûr e. *Muslim rîwayet kiriye.*

٢٠٢- عَنْ أَبِي خُبَيْبٍ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ الزُّبَيْرِ ﷺ قَالَ: لَمَّا وَقَفَ الزُّبَيْرُ يَوْمَ الْجَمَلِ دَعَانِي فَقُمْتُ إِلَى جَنْبِهِ فَقَالَ: يَا بُنَيِّ إِنَّهُ لَا يُقْتَلُ الْيَوْمَ إِلَّا ظَالِمٌ أَوْ مَظْلُومٌ وَإِنِّي لاَ أُرَانِي إِلَّا سَأُقْتَلُ الْيَوْمَ مَظْلُوماً، وَإِنَّ مِنْ أَكْبَرِ هَمِّي لَدَيْنِي، أَفَتُرَى يُبْقِي دَيْنُنَا مِنْ مَالِنَا شَيْئاً؟ فَقَالَ: يَا بُنَيِّ بِعْ مَالَنَا فَاقْضِ دَيْنِي، وَأَوْصَى بِالثُّلُثِ وَثُلُثِهِ لِبَنِيهِ يَعْنِي بَنِي عَبْدِ اللَّهِ بْنِ الزُّبَيْرِ ثُلُثُ الثُّلُثِ، قَالَ: فَإِنْ فَضَلَ مِنْ مَالِنَا فَضْلٌ بَعْدَ قَضَاءِ الدَّيْنِ شَيْءٌ فَثُلُثُهُ لِبَنِيكَ، قَالَ هِشَامٌ: وَكَانَ وَلَدِ عَبْدِ اللَّهِ قَدْ وَازَى بَعْضَ بَنِي الزُّبَيْرِ خُبَيْبٌ وَعَبَّادٌ، وَلَهُ يَوْمَئِذٍ تِسْعَةُ بَنِينَ وَتِسْعُ بَنَاتٍ، قَالَ عَبْدُ اللَّهِ: فَجَعَلَ يُوصِينِي بِدَيْنِهِ، وَيَقُولُ: يَا بُنَيِّ إِنْ عَجَزْتَ عَنْهُ فِي شَيْءٍ

فَاسْتَعِنْ عَلَيْهِ مَوْلَايَ، قَالَ: فَوَاللَّهِ مَا دَرَيْتُ مَا أَرَادَ حَتَّى قُلْتُ يَا أَبَتِ مَنْ مَوْلَاكَ؟ قَالَ: اللَّهُ، قَالَ: فَوَاللَّهِ مَا وَقَعْتُ فِي كُرْبَةٍ مِنْ دَيْنِهِ إِلَّا قُلْتُ: يَا مَوْلَى الزُّبَيْرِ اقْضِ عَنْهُ دَيْنَهُ فَيَقْضِيهِ، فَقُتِلَ الزُّبَيْرُ ﷺ وَلَمْ يَدَعْ دِينَاراً وَلَا دِرْهَماً إِلَّا أَرَضِينَ مِنْهَا الْغَابَةُ، وَإِحْدَى عَشْرَةَ دَاراً بِالْمَدِينَةِ وَدَارَيْنِ بِالْبَصْرَةِ، وَدَاراً بِالْكُوفَةِ وَدَاراً بِمِصْرَ، قَالَ: وَإِنَّمَا كَانَ دَيْنُهُ الَّذِي كَانَ عَلَيْهِ أَنَّ الرَّجُلَ كَانَ يَأْتِيهِ بِالْمَالِ فَيَسْتَوْدِعُهُ إِيَّاهُ فَيَقُولُ الزُّبَيْرُ: لَا، وَلَكِنَّهُ سَلَفٌ، فَإِنِّي أَخْشَى عَلَيْهِ الضَّيْعَةَ، وَمَا وَلِيَ إِمَارَةً قَطُّ، وَلَا جِبَايَةَ وَلَا شَيْئًا إِلَّا أَنْ يَكُونَ فِي غَزْوَةٍ مَعَ النَّبِيِّ ﷺ أَوْ مَعَ أَبِي بَكْرٍ وَعُمَرَ وَعُثْمَانَ ﷺ، قَالَ عَبْدُ اللَّهِ بْنُ الزُّبَيْرِ: فَحَسَبْتُ مَا عَلَيْهِ مِنَ الدَّيْنِ فَوَجَدْتُهُ أَلْفَيْ أَلْفٍ وَمِائَتَيْ أَلْفٍ، فَلَقِيَ حَكِيمُ بْنُ حِزَامٍ، عَبْدَ اللَّهِ بْنَ الزُّبَيْرِ فَقَالَ: يَا ابْنَ أَخِي كَمْ عَلَى أَخِي مِنَ الدَّيْنِ؟ فَكَتَمْتُهُ و قُلْتُ: مِائَةُ أَلْفٍ، فَقَالَ حَكِيمٌ: وَاللَّهِ مَا أُرَى أَمْوَالَكُمْ تَسَعُ هَذِهِ، فَقَالَ لَهُ عَبْدُ اللَّهِ؟ أَفَرَأَيْتَكَ إِنْ كَانَتْ أَلْفَيْ أَلْفٍ وَمِائَتَيْ أَلْفٍ؟ قَالَ: مَا أُرَاكُمْ تُطِيقُونَ هَذَا، فَإِنْ عَجَزْتُمْ عَنْ شَيْءٍ مِنْهُ فَاسْتَعِينُوا بِي، قَالَ: وَكَانَ الزُّبَيْرُ اشْتَرَى الْغَابَةَ بِسَبْعِينَ وَمِائَةِ أَلْفٍ، فَبَاعَهَا عَبْدُاللَّهِ بِأَلْفِ أَلْفٍ وَسِتِّ مِائَةِ أَلْفٍ، ثُمَّ قَامَ فَقَالَ: مَنْ كَانَ لَهُ عَلَى الزُّبَيْرِ شَيْءٌ فَلْيُوَافِنَا بِالْغَابَةِ، فَأَتَاهُ عَبْدُ اللَّهِ بْنُ جَعْفَرٍ وَكَانَ لَهُ عَلَى الزُّبَيْرِ أَرْبَعُ مِائَةِ أَلْفٍ، فَقَالَ لِعَبْدِ اللَّهِ: إِنْ شِئْتُمْ تَرَكْتُهَا لَكُمْ، قَالَ عَبْدُاللَّهِ: لَا، قَالَ: فَإِنْ شِئْتُمْ جَعَلْتُمُوهَا فِيمَا تُؤَخِّرُونَ إِنْ أَخَّرْتُمْ، فَقَالَ عَبْد اللَّهِ لَا قَالَ فَاقْطَعُوا لِي قِطْعَةً فَقَالَ عَبْدُ اللَّهِ لَكَ مِنْ هَهُنَا إِلَى هَهُنَا، فَبَاعَ عبد الله مِنْهَا فَقَضَى دَيْنَهُ فَأَوْفَاهُ وَبَقِيَ مِنْهَا أَرْبَعَةُ أَسْهُمٍ وَنِصْفٌ، فَقَدِمَ عَلَى مُعَاوِيَةَ وَعِنْدَهُ عَمْرُو بْنُ عُثْمَانَ وَالْمُنْذِرُ بْنُ الزُّبَيْرِ وَابْنُ زَمْعَةَ، فَقَالَ لَهُ مُعَاوِيَةُ: كَمْ قُوِّمَتِ الْغَابَةُ؟ قَالَ: كُلُّ سَهْمٍ مِائَةَ أَلْفٍ، قَالَ: كَمْ بَقِيَ مِنْهَا؟ قَالَ: أَرْبَعَةُ أَسْهُمٍ وَنِصْفٌ، قَالَ الْمُنْذِرُ بْنُ الزُّبَيْرِ: قَدْ أَخَذْتُ مِنْهَا سَهْمًا بِمِائَةِ أَلْفٍ، قَالَ

عَمْرُو بْنُ عُثْمَانَ: قَدْ أَخَذْتُ مِنْهَا سَهْمًا بِمِائَةِ أَلْفٍ، وَقَالَ ابْنُ زَمْعَةَ: قَدْ أَخَذْتُ مِنْهَا سَهْمًا بِمِائَةِ أَلْفٍ، فَقَالَ مُعَاوِيَةُ: كَمْ بَقِيَ مِنْهَا؟ فَقَالَ: سَهْمٌ وَنِصْفٌ، قَالَ: قَدْ أَخَذْتُهُ بِخَمْسِينَ وَمِائَةِ أَلْفٍ قَالَ وَبَاعَ عَبْدُ اللَّهِ بْنُ جَعْفَرٍ نَصِيبَهُ مِنْ مُعَاوِيَةَ بِسِتِّ مِائَةِ أَلْفٍ، فَلَمَّا فَرَغَ ابْنُ الزُّبَيْرِ مِنْ قَضَاءِ دَيْنِهِ، قَالَ بَنُو الزُّبَيْرِ: اقْسِمْ بَيْنَنَا مِيرَاثَنَا، قَالَ: لَا وَاللَّهِ لَا أَقْسِمُ بَيْنَكُمْ حَتَّى أُنَادِيَ بِالْمَوْسِمِ أَرْبَعَ سِنِينَ: أَلَا مَنْ كَانَ لَهُ عَلَى الزُّبَيْرِ دَيْنٌ فَلْيَأْتِنَا فَلْنَقْضِهِ، قَالَ: فَجَعَلَ كُلَّ سَنَةٍ يُنَادِي بِالْمَوْسِمِ، فَلَمَّا مَضَى أَرْبَعُ سِنِينَ قَسَمَ بَيْنَهُمْ وكَانَ لِلزُّبَيْرِ أَرْبَعُ نِسْوَةٍ وَدَفَعَ الثُّلُثَ فَأَصَابَ كُلَّ امْرَأَةٍ أَلْفُ أَلْفٍ وَمِائَتَا أَلْفٍ، فَجَمِيعُ مَالِهِ خَمْسُونَ أَلْفَ أَلْفٍ وَمِائَتَا أَلْفٍ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

202- Ji Ebû Xubeyb ‘Ebdullah kurê Zubeyr (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Roja bûyera Cemelê de Zubeyr rawestiya û gazî min kir. Ez jî rabûm li kêleka wî sekinîm. Zubeyr got: Ey kurê min! Îro mirovek zalim û yan jî wê mezlûm were kuştin. Ez bi xwe zen dikim ez dê mezlûm bême kuştin. Derdê min yê mezin ji deynê min in. Ma tu zen dikî ku deynê me wê tiştekî ji malê me ji me re bihêle? Paşê got: Ey kurê min! Malê me bifroşe û deynê min bide. Sêyeka (3/1) malê xwe wesiyet kir. Ji sêyeka yek (3/1) ji bona zarokên xwe, yanê zarokên ‘Ebdullah kurê Zubeyr. Got eger piştî dayina deynê me tiştek ji malê me zêde ma sêyeka wî ji bona zarokên xwe veqetîne. Hîşam got: Hinek zarokên ‘Ebdullah hevalê zarokên Zubeyr bûn, wekî Xubeyb û ‘Ebbad. Wî zemanî neh kur û neh keçên wî hebûn. ‘Ebdullah got: Bavê min wesiyeta deynê xwe kir û got: Ey kurê min! Heke te nekarî deynê min tevî bidî arîkariyê ji Mewlayê min bixwaze. ‘Ebdullah got: Bi Xwedê sond dixwim min nezanî ku çi qesd kiriye heta min got: Ey bavo! Mewlayê te çi kes e? Got: Xwedê ye. Ez sond dixwim bi Xwedê çiqas ku di aliyê dayina deynê wî de ketim tengiyê, min got: Ya Mewlayê Zubeyr! Tu deynê wî ji dêl/pêş wî ve bide. Xwedê ‘ezze we celle jî pêk dianî. ‘Ebdullah got: Zubeyr şehîd bû. Li paş xwe ne dînarek hişt ne dîrhemek. Bes çend erdên wî hebûn yek ji wan jî “Xabe” bû û yazdeh (11) xanî li Medînê û du (2) xanî li Besrayê û xaniyek jî li Kûfayê û xaniyek din jî li Misrê hebû. ‘Ebdullah got: Deyndariya wî (Zubeyr) wilo bû: Mirovek dihat bi emanet malê xwe teslîmî Zubeyr dikir. Zubeyr digot: Na bila deynî be. Çunkî ditir-

  

sim ku winda be. Zubeyr tu caran ne bûbû mîr ne jî wezîfa komkirina malê zikatê û yan jî xeracê wergirtibû. Ji bilî ku di herbê de digel Pêxemberê Xwedê (s.) û Ebûbekir û 'Umer û Osman be. 'Ebdullah got: Min deynên Zubeyr jimart, min dît vaye wê du milyon û dused hezar (2. 200. 000) e. Vêca Hekîm kurê Hizam lîqayê 'Ebdullah kurê Zubeyr hat û got: Ey birazî! Çiqas deynê birayê min heye? Min jê veşart û min got sed hezar e. Hekîm got, Wellahî ez zen nakim ku malê we têra vî deynê bike. 'Ebdullah got: Kanê tu bo min bibêje eger deynê wî duhezar hezar (du milyon) û du sed hezar (2.200.000) be hingî wê çawa be? Hekîm got: Zen nakim ku hûn bikaribin vî deynî bidin? Hekîm got: Heke hûn ketine tengiyê arîkariyê ji min bixwazin. Zubeyr (Xabe) bi sed û heftê hezarî (170. 000) kirîbû. Vêca 'Ebdullah bi milyonek û şeşsed hezarî firot. Paşê rabû got: Her kesê deynê wî li ser Zubeyr hebe bila were (Xabeyê) cem me. 'Ebdullah kurê Ca'fer hate cem 'Ebdullah çar sed hezar (400. 000) deynê wî li ser Zubeyr hebû. Gote 'Ebdullah hûn bixwazin ezê li we biborim. 'Ebdullah got: Na. Ca'fer got: Eger hûn hindek ji deynê wî paşve bihêlin deynê min paşda bidin. 'Ebdullah got: Na. 'Ebdullah kurê Ca'fer got: Parçeyek ji Xabê ji ber deynê min ve bidine min. 'Ebdullah got: Ji vir ta vira bila ji te re be. 'Ebdullah ji vîv erdî (parçe parçe) firot û deynê wî da, heta tiştek ji deynê wî nema. Lêbelê ji wî erdî hê ji çar par û nîv man. Vêca 'Ebdullah hate cem Mu'awiye, li cem 'Emr kurê Osman, Munzîr kurê Zubeyr û Îbn Zem'e hebû. Mu'awiye jê pirsî, erdê xabê bi çi hate qîmetkirin? 'Ebdullah got: Her par bi sed hezarî. Mu'awiye got: Çiqas jê maye: 'Ebdullah got: Çar par û nîv maye. Munzîr kurê Zubeyr got: Ez parekî bi sed hezarî dikirim. 'Emr kurê Osman jî got ez jî parekî jê bi sed hezarî dikirim. 'Ebdullah kurê Zem'e jî got: Ez jî parekî jê bi sed hezarî dikirim. Mu'awiye pirsî ma çiqas ma? Got parek û nîv maye. Mu'awiye got ez jî ya mayî bi sed û pêncî hezarî dikirim. 'Ebdullah got: 'Ebdullah kurê Ce'fer para xwe firote Mu'awiye bi şeşsed hezarî (600.000). Zemanê 'Ebdullah ji dayina deynan vala bû zarokên Zubeyr (r.) gotin: Vêca divê tu mirasa me li me bela bikî. 'Ebdullah got: Wellahî bi Xwedê sond dixwim heta çar salan, di serê her mewsimê de ez gazî nekim ku kanê deynê kî li ser Zubeyr heye bila bê da ku em deynê wî bidinê ez mîrasê li we bela nakim. Vêca her sal di mewsimê de gazî dikir heta çar sal borîn sêyek jê derêxist û yê mayî belav kir. Çar jinên Zubeyr hebûn. Para her jinekê hezar hezar (milyonek) û dused hezar (1.200.000). Vêca temamê malê wî pêncî hezar hezar (milyon) û dused hezar (50.200.000) bû. *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَحْرِيم الظُلْم وَالأَمْر بِرَدِّ الْمَظَالِم

## EV BAB DI DERHEQÊ ZILMÊ DE YE DI DERHEQÊ PAŞDEVEGERANDINA TIŞTÊN KU BI ZORDARIYÊ JI XWEDANÊ WAN HATINE WERGIRTIN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿مَا لِلظَّالِمِينَ مِنْ حَمِيمٍ وَلَا شَفِيعٍ يُطَاعُ﴾

"Ji zaliman re ne dostek, ne jî mehdervanekî ku gotinên wî bêne cih heye."[1]

﴿وَمَا لِلظَّالِمِينَ مِنْ نَصِيرٍ﴾

"Ji zaliman re tu arîkar çunîne."[2]

٢٠٣- عَنْ جَابِرٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (اتَّقُوا الظُّلْمَ فَإِنَّ الظُّلْمَ ظُلُمَاتٌ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، وَاتَّقُوا الشُّحَّ فَإِنَّ الشُّحَّ أَهْلَكَ مَنْ كَانَ قَبْلَكُمْ، حَمَلَهُمْ عَلَى أَنْ سَفَكُوا دِمَاءَهُمْ، وَاسْتَحَلُّوا مَحَارِمَهُمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

203- Ji Cabir (r.), bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn xwe ji zilmê biparêzin çunkî zilm/zordarî di roja qiyametê de tarîtî ye û hûn xwe ji kunûjîtiyê/timatî jî biparêzin. Çunkî kunûjîtiyê ew kesên beriya we de birin helakê. Bû sedema ku xûna hevdu rijandin û tiştê Xwedê heram kir helal kirin." *Muslim riwayet kiriye.*

٢٠٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَتُؤَدُّنَّ الْحُقُوقَ إِلَى أَهْلِهَا يَوْمَ الْقِيَامَةِ حَتَّى يُقَادَ لِلشَّاةِ الْجَلْحَاءِ مِنَ الشَّاةِ الْقَرْنَاءِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

204- Ji Ebû Hureyre (r.) got, Pêxember (s.) gotiye: Dê roja qiyametê de hûnê heqê di stûyê we de ne, bidine ehlê wê. Wê heqê bizina bêqiloç ji bizina biqiloç were standin. *Muslim riwayet kiriye.*

1 Xafir, 40/18.
2 Hec, 22/71.

٢٠٥- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: كُنَّا نَتَحَدَّثُ عَنْ حَجَّةِ الْوَدَاعِ وَالنَّبِيُّ ﷺ بَيْنَ أَظْهُرِنَا، وَلَا نَدْرِي مَا حَجَّةُ الْوَدَاعِ، حَتَّى حَمِدَ اللَّهَ وَأَثْنَى عَلَيْهِ، ثُمَّ ذَكَرَ الْمَسِيحَ الدَّجَّالَ فَأَطْنَبَ فِي ذِكْرِهِ وَقَالَ: (مَا بَعَثَ اللَّهُ مِنْ نَبِيٍّ إِلَّا أَنْذَرَ أُمَّتَهُ، نُوحٌ وَالنَّبِيُّونَ مِنْ بَعْدِهِ، وَإِنَّهُ يَخْرُجُ فِيكُمْ فَمَا خَفِيَ عَلَيْكُمْ مِنْ شَأْنِهِ فَلَيْسَ يَخْفَى عَلَيْكُمْ أَنَّ رَبَّكُمْ لَيْسَ بِأَعْوَرَ، وَإِنَّهُ أَعْوَرُ عَيْنِ الْيُمْنَى كَأَنَّ عَيْنَهُ عِنَبَةٌ طَافِيَةٌ، أَلَا إِنَّ اللَّهَ حَرَّمَ عَلَيْكُمْ دِمَاءَكُمْ وَأَمْوَالَكُمْ كَحُرْمَةِ يَوْمِكُمْ هَذَا فِي بَلَدِكُمْ هَذَا فِي شَهْرِكُمْ هَذَا أَلَا هَلْ بَلَّغْتُ) قَالُوا: نَعَمْ، قَالَ: (اللَّهُمَّ اشْهَدْ) ثَلَاثًا (وَيْلَكُمْ) أَوْ وَيْحَكُمْ (انْظُرُوا لَا تَرْجِعُوا بَعْدِي كُفَّارًا يَضْرِبُ بَعْضُكُمْ رِقَابَ بَعْضٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

205-Ji İbnu ‘Umer hatiye rîwayetkirin, got: Me ji Hecca Xatirxwestinê diaxaft, hê Pêxemberê Xwedê (s.) di nav me de bû, me nedizanîbû ku Heccet ul-Weda‘ çi bû. Heta Resûlê Xwedê (s.) rabû hemd û spasiya Xwedê kir, paşê jî behsa Deccal kir di derheqê wî de axaftina xwe dirêj kir û got: “Her pêxemberekî di derbarê fitna Deccalî de ummeta xwe hişyar kiriye. Nûh û pêxemberên piştî wî jî ummetên xwe ji fitna wî hişyar kirine. Û bêşik heçî Deccal e: Eger di nav we de derbikeve şe’n û halê wî li ser we xef bibe jî li ser we xef nabê ku Rebbê we ne bi çavekî ye. Bes Deccal ji çavê xwe yê rastê kor e. Çavê wî her wekî libek tiriya li ser avê ketiye. Hişyar bin, bêşik Xwedê te‘ala heram kiriye li ser we xûna we û malê we, wekî herambûna vê roja we di vî bajarê we de, di vê meha we de. Hûn hişyar bin. Gelo min hûn pê xeberdar kirin? Gotin: Belê. Got: Tu şahid be Ya Reb! Sê caran got: “Heyfa we. Binêrin han piştî min venegerin kufrê ku hûn histîkura hevdu de bidin/hevdu bikujin.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

٢٠٦- عَنْ عَائِشَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ ظَلَمَ قِيدَ شِبْرٍ مِنَ الأَرْضِ طُوِّقَهُ مِنْ سَبْعِ أَرَضِينَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

206-Ji ‘Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin, bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Her kesê biqasî bihustekî erdê yekî bi neheqî dex xwe ve bîne, her heft tebeqên erdê dê bibe toqek û bikeve stûyê wî.” *Buxari û Muslim rîwayet kirine.*

٢٠٧- عَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ يُمْلِي لِلظَّالِمِ فَإِذَا أَخَذَهُ لَمْ يُفْلِتْهُ) ثُمَّ قَرَأَ (وَكَذَلِكَ أَخْذُ رَبِّكَ إِذَا أَخَذَ الْقُرَى وَهِيَ ظَالِمَةٌ إِنَّ أَخْذَهُ أَلِيمٌ شَدِيدٌ–هُود١٠٢). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

207- Li gor rîwayeta Ebû Mûsayê Eş'erî (r.) got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedê 'ezze we celle muhletê dide zalim. Vêca wextê Xwedê ew girt êdî wî bernade. Paşê jî Resûlê Xwedê ev ayet xwend: "Weha ye girtina Rebbê te. Zemanê xelkê zalim bigre bêguman girtina wî giran e û diêşîne."
*Muslim û Buxarî riwayet kirine.*

٢٠٨- عَنْ مُعَاذٍ ﷺ قَالَ: بَعَثَنِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: (إِنَّكَ سَتَأْتِي قَوْماً مِنْ أَهْلِ الْكِتَابِ فَادْعُهُمْ إِلَى شَهَادَةِ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ وَأَنِّي رَسُولُ اللَّهِ، فَإِنْ هُمْ أَطَاعُوا لِذلِكَ فَأَعْلِمْهُمْ أَنَّ اللَّهَ قَدْ فَرَضَ عَلَيْهِمْ خَمْسَ صَلَوَاتٍ فِي كُلِّ يَوْمٍ وَلَيْلَةٍ فَإِنْ أَطَاعُوا لِذلِكَ فَأَعْلِمْهُمْ أَنَّ اللَّهَ قَدْ فَرَضَ عَلَيْهِمْ صَدَقَةً تُؤْخَذُ مِنْ أَغْنِيَائِهِمْ فَتُرَدُّ عَلَى فُقَرَائِهِمْ، فَإِنْ هُمْ أَطَاعُوا لِذَلِكَ فَإِيَّاكَ وَكَرَائِمَ أَمْوَالِهِمْ، وَاتَّقِ دَعْوَةَ الْمَظْلُومِ، فَإِنَّهُ لَيْسَ بَيْنَهُ وَبَيْنَ اللَّهِ حِجَابٌ).

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

208-Ji Mu'azê kurê Cebel (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ez şandim Yemenê û got: "Tuyê herî bal qewmekî ji ehlê kitaba. Vêca tu ewan dawet bike bal şehde anîna ku ji xeynê Xwedê tu îlah tune û ez jî qasidê wî me. Heger ewan îta'eta vêya kirin, tu bi wan bide zanîn ku Xwedê te'ala di her roj û şevê de pênc wext nimêj li ser wan ferz kiriye. Heger ewan îta'etî vêya kirin, tu bi wan bide zanîn ku Xwedê te'ala li ser wan ferz kiriye sedeqe ku ji dewlemendên wan bête standin û bête dayin ji feqîrê wan re. Heger ewan îtaet vêya jî kirin, êdî tu xwe ji hildana malê wan yê pir pak (ji bo zikatê) biparêze. Û xwe ji nifirê stembarî bisitirîne, lewra di navbera ewê nifirê û Xwedê de perde tuneye." *Muslim û Buxarî riwayet kirine.*

٢٠٩- عَنْ أَبِي حُمَيْدٍ السَّاعِدِيِّ ﷺ قَالَ: اسْتَعْمَلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ رَجُلاً مِنَ الأَزْدِ عَلَى الصَّدَقَةِ يُدْعَى: ابْنَ الأَتْبِيَّةِ، فَلَمَّا قَدِمَ قَالَ: هَذَا لَكُمْ وَهَذَا أُهْدِيَ إِلَيَّ، فَقَامَ رَسُولُ اللَّهِ

  

ﷺ عَلَى الْمِنْبَرِ فَحَمِدَ اللَّهَ وَأَثْنَى عَلَيْهِ، ثُمَّ قَالَ: (أَمَّا بَعْدُ، فَإِنِّي أَسْتَعْمِلُ الرَّجُلَ مِنْكُمْ عَلَى الْعَمَلِ مِمَّا وَلاَّنِي اللَّهُ، فَيَأْتِي فَيَقُولُ: هَذَا لَكُمْ وَهَذَا هَدِيَّةٌ أُهْدِيَتْ لِي، أَفَلَا جَلَسَ فِي بَيْتِ أَبِيهِ وَأُمِّهِ حَتَّى تَأْتِيَهُ هَدِيَّتُهُ إِنْ كَانَ صَادِقًا، وَاللَّهِ لَا يَأْخُذُ أَحَدٌ مِنْكُمْ مِنْهَا شَيْئًا بِغَيْرِ حَقِّهِ إِلَّا لَقِيَ اللَّهَ تَعَالَى يَحْمِلُهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، فَلَا أَعْرِفَنَّ أَحَدًا مِنْكُمْ لَقِيَ اللَّهَ يَحْمِلُ بَعِيرًا لَهُ رُغَاءٌ أَوْ بَقَرَةً لَهَا خُوَارٌ أَوْ شَاةً تَيْعَرُ) ثُمَّ رَفَعَ يَدَيْهِ حَتَّى رُئِيَ بَيَاضُ إِبْطَيْهِ ثُمَّ قَالَ: (اللَّهُمَّ هَلْ بَلَّغْتُ؟). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

209-Ji Ebû Humeyd es-Sa'idî (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) mirovek ji bona berhevkirina zikatê tayîn kir. Ew meriv ji qebîla Ezd bû, jê re digotin Îbnul-Etbiyye. Vêca dema vegeriya hat, got: Ev malê han yê we ye û evê han jî ji bona min hatiye diyarîkirin. Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) rabû hilket ser mînberê hemd û senaya Xwedê 'ezze we celle kir, paşê jî got: "Piştî vê yekê ji wî tiştê Xwedê te'ala kiriye di bin îdara min, ez mirovekî tayînî wezîfeyekê dikim, vêca dibêje: Ev mal ji we re ye û ev malê han jî ji bona min hatiye hediyekirin. Heke rast e naxwe çima li mala bavê xwe û yan jî li mala dayika xwe rûnanê heta diyariya wî jê re were? Ez bi Xwedê sond dixwim, her kesê ji we tiştekî neheq wergire, wê roja qiyametê wî hilgire û derkeve pêşberê Xwedê. Vêca bila ez yekî ji we nebînim bi dengê devê û yan bi orîna çêlekê û yan jî bi qarqara bizinê were hizûra Xwedê." Paşê jî Pêxemberê Xwedê (s.) destên xwe rakirin ta spîtiya bin çengê wî hate dîtin û got: Ya Xwedê, min teblîx kir? *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٢١٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ كَانَتْ لَهُ مَظْلَمَةٌ لِأَخِيهِ مِنْ عِرْضِهِ أَوْ شَيْءٍ فَلْيَتَحَلَّلْهُ مِنْهُ الْيَوْمَ قَبْلَ أَنْ لَا يَكُونَ دِينَارٌ وَلَا دِرْهَمٌ، إِنْ كَانَ لَهُ عَمَلٌ صَالِحٌ أُخِذَ مِنْهُ بِقَدْرِ مَظْلَمَتِهِ، وَإِنْ لَمْ تَكُنْ لَهُ حَسَنَاتٌ أُخِذَ مِنْ سَيِّئَاتِ صَاحِبِهِ فَحُمِلَ عَلَيْهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

210-Li gor rîwayeta Ebû Hureyre (r.) Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Her kesê bi zilmê destê xwe dirêjê namûsa birayê xwe û yan jî malê wî kiribe, hê ew roja ku dînar û dirhem feyde nedin nehatiye bila ew îro xwe bi wî

bide helal kirin. Eger bi xwe 'emelê wî yê baş hebe dê li gor neheqiya wî li yekî di dunyayê de kiriye jê bê wergirtin. Eger xêr û xêratên wî çûnebin hunebin dê hindek ji gunehên hevalê wî bê wergirtin û bibe barê wî yê zalim." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٢١١- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (الْمُسْلِمُ مَنْ سَلِمَ الْمُسْلِمُونَ مِنْ لِسَانِهِ وَيَدِهِ، وَالْمُهَاجِرُ مَنْ هَجَرَ مَا نَهَى اللَّهُ عَنْهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

211-Ji 'Ebdullah kurê 'Emrê kurê As (r.) hatiye rîwayetkirin, Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Misilman ew e ku misilman ji ziman û destê wî di silametiyê de ne. Û muhacir jî ew e ku tiştê Xwedê nehî kiriye terikandiye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢١٢- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو قَالَ: كَانَ عَلَى ثَقَلِ النَّبِيِّ ﷺ رَجُلٌ يُقَالُ لَهُ: كِرْكِرَةُ فَمَاتَ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (هُوَ فِي النَّارِ) فَذَهَبُوا يَنْظُرُونَ إِلَيْهِ فَوَجَدُوا عَبَاءَةً قَدْ غَلَّهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

212-Dîsa ji 'Ebdullah kurê Umrê (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Mirovek xwarin û vexwarina wî ji kîsê Pêxemberê Xwedê bû. Jê re Kirkire dihat gotin. Wextê ew mir, Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ew di êgir de ye." Vêca çûn lê mêze bikin, dîtin ku wî kurkek ji malê xenîmêtê diziye. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٢١٣- عَنْ أَبِي بَكْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ: (أَنَّهُ قَالَ إِنَّ الزَّمَانَ قَدِ اسْتَدَارَ كَهَيْئَتِهِ يَوْمَ خَلَقَ اللَّهُ السَّمَاوَاتِ وَالأَرْضَ، السَّنَةُ اثْنَا عَشَرَ شَهْراً، مِنْهَا أَرْبَعَةٌ حُرُمٌ، ثَلاثَةٌ مُتَوَالِيَاتٌ: ذُو الْقَعْدَةِ، وَذُو الْحِجَّةِ، وَالْمُحَرَّمُ، وَرَجَبُ شَهْرُ مُضَرَ الَّذِي بَيْنَ جُمَادَى وَشَعْبَانَ، ثُمَّ قَالَ أَيُّ شَهْرٍ هَذَا قُلْنَا: اللَّهُ وَرَسُولُهُ أَعْلَمُ، قَالَ: فَسَكَتَ حَتَّى ظَنَنَّا أَنَّهُ سَيُسَمِّيهِ بِغَيْرِ إِسْمِهِ، قَالَ: (أَلَيْسَ ذَا الْحِجَّةِ) قُلْنَا بَلَى، قَالَ: (فَأَيُّ بَلَدٍ هَذَا) قُلْنَا: اللَّهُ وَرَسُولُهُ أَعْلَمُ، فَسَكَتَ حَتَّى ظَنَنَّا أَنَّهُ سَيُسَمِّيهِ بِغَيْرِ إِسْمِهِ، قَالَ: (أَلَيْسَ الْبَلْدَةَ الحرام) قُلْنَا: بَلَى، قَالَ: (فَأَيُّ يَوْمٍ هَذَا) قُلْنَا: اللَّهُ وَرَسُولُهُ أَعْلَمُ، قَالَ: فَسَكَتَ حَتَّى ظَنَنَّا أَنَّهُ سَيُسَمِّيهِ بِغَيْرِ إِسْمِهِ قَالَ: (أَلَيْسَ يَوْمَ النَّحْرِ) قُلْنَا: بَلَى، يَا رَسُولَ اللَّهِ قَالَ: (فَإِنَّ دِمَاءَكُمْ وَأَمْوَالَكُمْ وَأَعْرَاضَكُمْ

حَرَامٌ عَلَيْكُمْ، كَحُرْمَةِ يَوْمِكُمْ هَذَا فِي بَلَدِكُمْ هَذَا فِي شَهْرِكُمْ هَذَا، وَسَتَلْقَوْنَ رَبَّكُمْ فَيَسْأَلُكُمْ عَنْ أَعْمَالِكُمْ، فَلَا تَرْجِعُوا بَعْدِي كُفَّاراً أَوْ ضُلَّالاً يَضْرِبُ بَعْضُكُمْ رِقَابَ بَعْضٍ، أَلَا لِيُبَلِّغِ الشَّاهِدُ الْغَائِبَ، فَلَعَلَّ بَعْضَ مَنْ يُبَلَّغُهُ يَكُونُ أَوْعَى لَهُ مِنْ بَعْضِ مَنْ سَمِعَهُ) ثُمَّ قَالَ: (أَلَا هَلْ بَلَّغْتُ؟) قُلْنَا: نَعَمْ، قَالَ: (اَللَّهُمَّ اشْهَدْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

213-Ji Ebî Bekrete (r.) hatiye rîwayetkirin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bêguman zeman vegeriyaye wekî şeklê xwe yê ku Xwedê ‘ezze we celle erd û asîman afirandiye. Sal duwazdeh (12) meh in. Çar (4) meh ji wan heram in, sisê li pey hev in. Zulqe‘de, zulhicce, muherrem. Receba muder ewa ku di neqeba cumadul-axirê û şe‘banê de. Dûre Resûlê Ekrem (s.) got: Ev çi meh e? Me got: Xwedê û Pêxemberê wî dizanin. Sekinî heta me zen kir ku wê navekî dî lê bike. Got: Ma ne Zîlhicce ye? Me got: Belê. Got: Ev çi bajar e? Me got: Xwedê û Pêxemberê wî dizanin. Rawestiya heta me zen kir wê navekî lê bînê got: Ma qey ev ne Beledê Heram e? (Mekke ye). Me got: Belê. Got: Ev çi roj e? Me got: Xwedê û Resûlê wî dizanin. Got: Ma ev ne roja Nehrê ye? Me got: Belê. Got: Bêşik xûna we, malên we, namûsa we heram in li ser we, wekî herambûna vê roja we di vî bajarê we de, di vê meha we de. Hûn dê lîqayê Rebbê xwe bibin, wê pirsa kar û ‘emelên we bike. Hûn hişyar bin piştî min nebine kafir ku hindek ji we histûkura hindekan bidin. Dîqqet bikin bila yên hazir yên ku ne hazir xeberdar bikin. Çunkî dibe ku hindek ji yên ku pê xeberdar dibin hifz û zeka wan zêdetir be ji wan kesên ku ji min guh lê dibin. Paşê jî Resûlê Xwedê (s.) got. Dîqqet bikin. Min gotina Xwedê teblîx kir? Me got: Belê. Got: "Tu bibe şahid Ya Reb!.." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢١٤- عَنْ أَبِي أُمَامَةَ إِيَّاس بن ثَعْلَبَةَ الْحَارِثِي ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنِ اقْتَطَعَ حَقَّ امْرِئٍ مُسْلِمٍ بِيَمِينِهِ فَقَدْ أَوْجَبَ اللَّهُ لَهُ النَّارَ وَحَرَّمَ عَلَيْهِ الْجَنَّةَ) فَقَالَ لَهُ رَجُلٌ: وَإِنْ كَانَ شَيْئاً يَسِيراً يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: (وَإِنْ قَضِيباً مِنْ أَرَاكٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

214-Ji Ebî Umame Iyasê kurê Se‘lebe yê Harisî (r.) hatiye rîwayetkirin. Bêşik Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Her kesê bi sonda xwe heqê birayê xwe yê misilman wergire (yanî xesb bike) Xwedê te‘ala êgir ji bo wî wacib dike û cennetê jî li ser wî heram dike." Rawiyê hedîsê got: Çendan

ku tiştek hindik jî be? Got: “Çendan ku çiqek ji dara erakî/mîswakê be.”
*Muslim rîwayet kiriye.*

٢١٥- عَنْ عَدِيِّ بْنِ عَمِيرَةَ ﷺ قَالَ سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنِ اسْتَعْمَلْنَاهُ مِنْكُمْ عَلَى عَمَلٍ فَكَتَمْنَا مِخْيَطًا فَمَا فَوْقَهُ كَانَ غُلُولاً يَأْتِي بِهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ) قَالَ فَقَامَ إِلَيْهِ رَجُلٌ أَسْوَدُ مِنَ الأَنْصَارِ كَأَنِّي أَنْظُرُ إِلَيْهِ، فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ اقْبَلْ عَنِّي عَمَلَكَ، قَالَ: (وَمَا لَكَ) قَالَ: سَمِعْتُكَ تَقُولُ كَذَا وَكَذَا، قَالَ: (وَأَنَا أَقُولُهُ الآنَ: مَنِ اسْتَعْمَلْنَاهُ مِنْكُمْ عَلَى عَمَلٍ فَلْيَجِئْ بِقَلِيلِهِ وَكَثِيرِهِ، فَمَا أُوتِيَ مِنْهُ أَخَذَ، وَمَا نُهِيَ عَنْهُ انْتَهَى). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

215-Ji ‘Ediyê kurê ‘Emîre (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye digot: “Her kesê me ew kire me mûrê (komkirina malê zikatê û yan yê xenîmetê û ji xeyrê wan jî) vêca ji me miqdara “derziyekê” û yan zêdetir veşêre dibe xiyanet, ewê bi wî tiştî xiyanet kirî were heşrê.” Vêca mirovek reş ji Ensariyan rabû li ser piya her wekî ez lê dinêrim got: Ey Resûlê Xwedê, ew me mûriyeta ku we daye min hûn ji min wergirin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: Te xêre çi ye halê te? Got: Min ji te bihîst tu wisa wisa dibêjî. Pêxemberê Xwedê (s.) Got: “Ez niha jî dibêjim her kesê ku me li ser îşekî kire memûr bila ew yê hindik yê gelek hemiyan bîne. Ew tiştê jê re hate dayin bila wergire, ew tiştê nehya wî jê hate kirin bila ew xwe jê dûr bigre.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٢١٦- عَنْ عُمَرُ بْنُ الْخَطَّابِ ﷺ قَالَ: لَمَّا كَانَ يَوْمُ خَيْبَرَ أَقْبَلَ نَفَرٌ مِنْ صَحَابَةِ النَّبِيِّ ﷺ فَقَالُوا: فُلاَنٌ شَهِيدٌ فُلاَنٌ شَهِيدٌ، حَتَّى مَرُّوا عَلَى رَجُلٍ فَقَالُوا: فُلاَنٌ شَهِيدٌ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (كَلاَّ إِنِّي رَأَيْتُهُ فِي النَّارِ فِي بُرْدَةٍ غَلَّهَا أَوْ عَبَاءَةٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

216- Ji ‘Umerê kurê Xettab (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Zemanê herba Xeyberê de ji eshaban cema‘etek hate cem Pêxemberê Xwedê (s.). Vêca gotin: “Filan kes şehîd e û filan kes şehîd e, heta ber mirovekî re borîn gotin filan kes jî şehîd e. Resûlê Ekrem (s.) Got: Nexêr, nexêr ji ber ku wî kurkek ji malê xenîmetê wergirtibû/xiyanet kiribû, min ew di êgir de dît.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٢١٧- عَنْ أَبِي قَتَادَةَ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَامَ فِيهِمْ فَذَكَرَ لَهُمْ أَنَّ الْجِهَادَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ وَالإِيمَانَ بِاللَّهِ أَفْضَلُ، الأَعْمَالِ فَقَامَ رَجُلٌ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، أَرَأَيْتَ إِنْ قُتِلْتُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ تُكَفَّرُ عَنِّي خَطَايَايَ؟ فَقَالَ لَهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (نَعَمْ إِنْ قُتِلْتَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ وَأَنْتَ صَابِرٌ مُحْتَسِبٌ مُقْبِلٌ غَيْرُ مُدْبِرٍ) ثُمَّ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (كَيْفَ قُلْتَ) قَالَ: أَرَأَيْتَ إِنْ قُتِلْتُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ أَتُكَفَّرُ عَنِّي خَطَايَايَ؟ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (نَعَمْ وَأَنْتَ صَابِرٌ مُحْتَسِبٌ مُقْبِلٌ غَيْرُ مُدْبِرٍ إِلَّا الدَّيْنَ، فَإِنَّ جِبْرِيلَ ﷺ قَالَ لِي ذَلِكَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

217-Ji Ebû Qatade (r.) hatiye rîwayetkirin. Pêxemberê Xwedê (s.) rabû ji me re xutbeyek da. Di xutba xwe de got: “Cîhada di rêya Xwedê de û îmana bi Xwedê qenctirînê ‘emelan e. Li ser vê yekê mirovek rabû li ser piya û got: Ya Resûlê Xwedê! Kanê bo min bêje, eger ez di rêya Xwedê de bêm kuştin gunehên min dê bên ‘efûkirin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: Belê eger tu bê kuştin di rêya Xwedê de bes tu sebirkar bî û xêra wê ji xwe re hesab bikî, di cengê de pêşde herî paşde nerevî. Paşê jî Pêxemberê Xwedê (s.) got: Te çi got? Wî got: Eger ez hatim kuştin di rêya Xwedê de, dê gunehên min bêne xefirandin? Pêxemberê Xwedê (s.) got: Belê. Eger tu sebrê bikî xêra cîhadê ji xwe re bihesibînî û di cengê de pêşde herî paşde nerevî ji xeyrê deyn. Çunkî Cebraîl ew ji min re gotiye.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٢١٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (أَتَدْرُونَ مَنِ الْمُفْلِسُ؟) قَالُوا: الْمُفْلِسُ فِينَا مَنْ لَا دِرْهَمَ لَهُ وَلَا مَتَاعَ، فَقَالَ: (إِنَّ الْمُفْلِسَ مِنْ أُمَّتِي يَأْتِي يَوْمَ الْقِيَامَةِ بِصَلَاةٍ وَصِيَامٍ وَزَكَاةٍ، وَيَأْتِي قَدْ شَتَمَ هَذَا وَقَذَفَ هَذَا، وَأَكَلَ مَالَ هَذَا، وَسَفَكَ دَمَ هَذَا، وَضَرَبَ هَذَا فَيُعْطَى هَذَا مِنْ حَسَنَاتِهِ وَهَذَا مِنْ حَسَنَاتِهِ، فَإِنْ فَنِيَتْ حَسَنَاتُهُ قَبْلَ أَنْ يُقْضَى مَا عَلَيْهِ أُخِذَ مِنْ خَطَايَاهُمْ فَطُرِحَتْ عَلَيْهِ ثُمَّ طُرِحَ فِي النَّارِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

218-Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn dizanin di nav me de ‘muflis’ kî ye?” Gotin, li gora me “muflis” ew kes e ne dînarê wî heye û ne dirhemê wî. Pêxemberê Xwedê (s.) got, “muflis” ji ummeta min ew kes e yê ku di roja qiyametê de bi

nimêja xwe û bi rojiya xwe û bi zekata xwe tê, bes digel vê dijûn li yekî kiriye, bêbextî li yekî dîtir kiriye, malê yekî dî xwariye, xûna yekî rijandiye û li yekî xistiye. Vêca hindek ji xêrên wî tê dayin ji yekî re û hindek xêrin dîtir tê dayin ji yê dîtir re. Ger ku hê tiştê li ser neqedayî, xêrên wî xelas bibin, gunehên wan tê avêtin ser pişta wî û dûre tê avêtin di agir de." *Muslim rîwayet kiriye.*

٢١٩- عَنْ أُمِّ سَلَمَةَ ﵂ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّمَا أَنَا بَشَرٌ وَإِنَّكُمْ تَخْتَصِمُونَ إِلَيَّ، وَلَعَلَّ بَعْضَكُمْ أَنْ يَكُونَ أَلْحَنَ بِحُجَّتِهِ مِنْ بَعْضٍ، فَأَقْضِي لَهُ بِنَحْوِ مَا أَسْمَعُ، فَمَنْ قَضَيْتُ لَهُ مِنْ حَقِّ أَخِيهِ فَإِنَّمَا أَقْطَعُ لَهُ قِطْعَةً مِنَ النَّارِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

219- Ji dayika me Ummu Seleme (r.) hatiye rîwayetkirin, bêşik Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman ez beşer im hûn jî ji bona çareserkirina hindek de'wan têne cem min, dibe hindek ji we ji hindekan hostatir in bi anîna delîlan. Vêca ez jî li gora bihîstina xwe hikum dikim. Vêca ew kesê ez heqê birayê wî bidime wî, bêşik ez qetek agirî ji wî re hikum dikim." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٢٠- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﵄ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَنْ يَزَالَ الْمُؤْمِنُ فِي فُسْحَةٍ مِنْ دِينِهِ مَا لَمْ يُصِبْ دَماً حَرَاماً). رَوَاهُ البُخَارِي.

220-Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Meydana hêviyê ji bona mu'min fireh e. Hindî ku xûna heram nerijandibe." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٢٢١- عَنْ خَوْلَةَ بنت عَامِرِ الأَنْصَارِيَة وَهِيَ إِمْرَأَة حَمْزَة ﵂ قَالَتْ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ رِجَالاً يَتَخَوَّضُونَ فِي مَالِ اللَّهِ بِغَيْرِ حَقٍّ فَلَهُمُ النَّارُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ البُخَارِي.

221-Li gor rîwayeta jina Hemze Xewlete keça 'amirî ya Ensarî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst digot: "Bêguman ew mirovên bi neheqî malê Xwedê 'ezze we celle dixwin di roja qiyametê de wan agirê cehennemê ji xwe re heq kirine." *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَعْظِيمِ حُرمَاتِ الْمُسْلِمِينَ وَبَيَانُ حُقُوقِهِمْ وَالشَّفَقَة عَلَيْهِمْ وَرَحْمتهِمْ

## EV BAB DERHEQÊ MEZINKIRINA HURMETA MISILMANAN Û DERHEQÊ BEYANKIRINA HUQÛQÊN WAN Û ŞEFQET Û MERHEMETA LI SER WAN DE YE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedê te'ala gotiye:

﴿وَمَنْ يُعَظِّمْ حُرُمَاتِ اللَّهِ فَهُوَ خَيْرٌ لَهُ عِنْدَ رَبِّهِ﴾

"Her kesê ku qedrê (fermanê) Xwedê mezin bike, ew bo wî baştir e."[1]

﴿وَمَنْ يُعَظِّمْ شَعَائِرَ اللَّهِ فَإِنَّهَا مِنْ تَقْوَى الْقُلُوبِ﴾

"Her kesê şe'a'irên (dînê) Xwedê mezin (te'zîm) bike, bêşik ew ji teqwa qelban e."[2]

﴿وَاخْفِضْ جَنَاحَكَ لِلْمُؤْمِنِينَ﴾

"(Ya Muhemmed) Çengê xwe ji bona mu'minan nizim bike."[3]

﴿مَنْ قَتَلَ نَفْساً بِغَيْرِ نَفْسٍ أَوْ فَسَادٍ فِي الأَرْضِ فَكَأَنَّمَا قَتَلَ النَّاسَ جَمِيعًا وَمَنْ أَحْيَاهَا فَكَأَنَّمَا أَحيَا النَّاسَ جَمِيعاً﴾

"Her kî nefseke ku cinayet nekiriye û li ser rûyê erdê xerabî dernexistiye bikuje her wekî temamê însanan kuştiye û her kesê nefsek (weha) îhya bike her wekî wî temamê însanan îhya kiriye."[4]

٢٢٢- عَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (اَلْمُؤْمِنُ لِلْمُؤْمِنِ كَالْبُنْيَانِ يَشُدُّ بَعْضُهُ بَعْضاً) وَشَبَكَ بَيْنَ أَصَابِعِهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

222-Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mirovê mu'min ji bo mirovê mu'min wekî avahiyekêye; hindek ji wî hindekî dişidîne." Ji bo ku bê fêm kirin Resûlê Xwedê tiliyên her du destên xwe di nav hevdu re derbas kirin. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 Hec, 22/30.
2 Hec, 22/32.
3 Hîcr, 15/88.
4 Ma'îde, 5/32.

٢٢٣- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (مَنْ مَرَّ فِي شَيْءٍ مِنْ مَسَاجِدِنَا أَوْ أَسْوَاقِنَا وَمَعَهُ نَبْلٌ فَلْيُمْسِكْ، أَوْ لِيَقْبِضْ عَلَى نِصَالِهَا بِكَفِّهِ، أَنْ يُصِيبَ أَحَدًا مِنَ الْمُسْلِمِينَ مِنْهَا). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

223-Dîsa ji Ebû Mûsa (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Her kesê ber mizgeftên me de û yan jî sûkên me de derbas bibe û digel wî tîrek hebe, bila ew serê tîrê xwe –asinê wî– bigre. Ji bona ku ew li misilmana nekeve." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٢٤- عَنِ النُّعْمَانَ بْنَ بَشِيرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَثَلُ الْمُؤْمِنِينَ فِي تَوَادِّهِمْ وَتَرَاحُمِهِمْ وَتَعَاطُفِهِمْ مَثَلُ الْجَسَدِ، إِذَا اشْتَكَى مِنْهُ عُضْوٌ تَدَاعَى لَهُ سَائِرُ الْجَسَدِ بِالسَّهَرِ وَالْحُمَّى). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

224-Li gor rîwayeta Nu'manê kurê Beşîr (r.) Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mesela di hezkirina wan digel hevdu di êşandina wan digel hev, di hevûdugirtina wan digel yêkudu de wekî cesedekî ye. Zemanê 'uzwek ji cesedî nexweş bibe, ji ber wê temamê cesedî dikeve tayê û bêxewiyê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٢٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَبَّلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ الْحَسَنَ بْنَ عَلِيٍّ ﷺ وَعِنْدَهُ الأَقْرَعُ بْنُ حَابِسٍ، فَقَالَ الأَقْرَعُ: إِنَّ لِي عَشَرَةً مِنَ الْوَلَدِ مَا قَبَّلْتُ مِنْهُمْ أَحَداً، فَنَظَرَ إِلَيْهِ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ ثُمَّ قَالَ (مَنْ لَا يَرْحَمُ لَا يُرْحَمُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

225-Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) Hesen kurê 'Elî (r.) maç kir û welhal Eqre'ê kurê Habis li cem wî rûniştî bû. Eqre' got: Bêguman deh (10) zarokên min hene. Lêbelê min yek ji wan maç nekiriye. Vêca Resûlê Xwedê (s.) bi nezera 'ecîb berê xwe da wî û got: "Her kesê rehmê neke li wî rehm nayê kirin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٢٦- عَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: قَدِمَ نَاسٌ مِنَ الأَعْرَابِ عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالُوا: أَتُقَبِّلُونَ صِبْيَانَكُمْ؟ فَقَالَ: نَعَمْ، فَقَالُوا: لَكِنَّا وَاللَّهِ مَا نُقَبِّلُ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَوَ أَمْلِكُ إِنْ كَانَ اللَّهُ نَزَعَ مِنْ قُلُوبِكُمُ الرَّحْمَةَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

226-Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin got: Ji bedewiyan cema'etek hatin cem Pêxemberê Xwedê (s.) gotin: Hûn piçûkên xwe maçî dikin? Resûlê Xwedê got: Belê. Wan gotin: Lakîn em bi xwe piçûkên xwe maç nakin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: Eger Xwedê te'ala ji dilên we rehmet derxistibe ez dikarim çi bikim. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٢٧- عَنْ جَرِيرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (مَنْ لَا يَرْحَمِ النَّاسَ لَا يَرْحَمْهُ اللَّهُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

227-Ji Cerîrê kurê 'Ebdullah (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Her kesê rehmê li însanan neke Xwedê te'ala jî rehmê li wî kesî nake." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٢٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (إِذَا صَلَّى أَحَدُكُمْ لِلنَّاسِ فَلْيُخَفِّفْ فَإِنَّ فِيهِمُ الضَّعِيفَ وَالسَّقِيمَ وَالْكَبِيرَ، وَإِذَا صَلَّى أَحَدُكُمْ لِنَفْسِهِ فَلْيُطَوِّلْ مَا شَاءَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَ فِي رِوَايَةٍ: (وَذَا الْحَاجَةِ)

228-Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, bêşik Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Zemanê yekî ji we li pêşiya cema'etekê bi îmametî nimêj kir, bila hindekî sivik bike. Çunkî di nav wan de yên ze'îf û yên nexweş û yên pîr hene. Wextê yekî ji bona xwe tenê kir, nimêjê çiqas bivê bila dirêj bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetek dî de: "Yên xwedanê îşê 'ecele hene."

٢٢٩- عَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: إِنْ كَانَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ لَيَدَعُ الْعَمَلَ وَهُوَ يُحِبُّ أَنْ يَعْمَلَ بِهِ خَشْيَةَ أَنْ يَعْمَلَ بِهِ النَّاسُ فَيُفْرَضَ عَلَيْهِمْ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

229-Li gor rîwayeta 'Aîşe (r.) got: "Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) 'emelê ku bixwesta bike, ji tirsa ku meriv pê 'emel bikin û li ser wan ferz bibe terk dikir." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٣٠- وَعَنْهَا ﷺ قَالَتْ: نَهَاهُمُ النَّبِيُّ ﷺ عَنِ الْوِصَالِ رَحْمَةً لَهُمْ، فَقَالُوا: فَإِنَّكَ تُوَاصِلُ، قَالَ: (إِنِّي لَسْتُ كَهَيْئَتِكُمْ إِنِّي أَبِيتُ يُطْعِمُنِي رَبِّي يَسْقِينِي). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

230-Dîsa ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji bona ku nebe zehmetî, men'a sehabiyan kir ku bêfitar du rojan li pêy hevdu rojî bin. Vêca wan gotin: Ya Resûlê Xwedê! Tu bêfitar rojî digirî? Resûlê Xwedê got: "Ez ne wekî we me, ez radizêm Rebbê min, min têrxwarin û têrav dike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٣١- وَعَنْ أَبِي قَتَادَةَ الْحَارِثُ بْنِ رَبْعِيٍّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (إِنِّي لأَقُومُ إِلَى الصَّلَاةِ وَأُرِيدُ أَنْ أُطَوِّلَ فِيهَا، فَأَسْمَعُ بُكَاءَ الصَّبِيِّ، فَأَتَجَوَّزُ فِي صَلَاتِي كَرَاهِيَةَ أَنْ أَشُقَّ عَلَى أُمِّهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

231- Ji Ebû Qetade Haris kurê Rebî'ê (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman ez gelek caran radibim nimêjê dixwazim ku nimêja xwe dirêj bikim. Vêca ez giriyê zarokekî dibihîzim, ji ber vê yekê ez nimêja xwe sivik dikim. Ji ber ku dayika wî zehmetiyê nekişîne." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٢٣٢- عَنْ جُنْدُبِ بْنِ عَبدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ صَلَّى صَلَاةَ الصُّبْحِ فَهُوَ فِي ذِمَّةِ اللَّهِ، فَلَا يَطْلُبَنَّكُمُ اللَّهُ مِنْ ذِمَّتِهِ بِشَيْءٍ فَإِنَّهُ مَنْ يَطْلُبْهُ مِنْ ذِمَّتِهِ بِشَيْءٍ يُدْرِكْهُ، ثُمَّ يَكُبَّهُ عَلَى وَجْهِهِ فِي نَارِ جَهَنَّمَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

232-Ji Cundibê kurê 'Ebdullah (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Her kesê nimêja sibehê bike ew dikeve hîmayeta Xwedê. Vêca bila Xwedê te'ala bi tiştê 'ehd û zimmeta xwe, we mutalebe neke. Çunkî çi kesê Xwedê wî bi tiştekî ji zimmeta xwe daxwaz bike, dê wî bigre, paşê jî dê wî li ser rûyê wî bavêje cehenemê." *Muslim rîwayet kiriye.*

٢٣٣- عَنِ ابْنَ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (الْمُسْلِمُ أَخُو الْمُسْلِمِ لَا يَظْلِمُهُ وَلَا يُسْلِمُهُ، وَمَنْ كَانَ فِي حَاجَةِ أَخِيهِ كَانَ اللَّهُ فِي حَاجَتِهِ، وَمَنْ فَرَّجَ عَنْ مُسْلِمٍ كُرْبَةً فَرَّجَ اللَّهُ عَنْهُ كُرْبَةً مِنْ كُرُبَاتِ يَوْمِ الْقِيَامَةِ، وَمَنْ سَتَرَ مُسْلِمًا سَتَرَهُ اللَّهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

233-Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin. Bêşik Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Misilman birayê misilman e, çênabe zilmê lê bike û çênabe wî

  

teslîmî neyarê wî bike. Her kesê hewcedariya birayê xwe pêk bîne Xwedê dê hewcedariya wî pêk bîne. Her kesê ji birayê xwe yê misilman kedereka wî bibe, Xwedê te'ala jî dê kedereke ji kederên wî yên roja qiyametê bibe. Her kesê 'eyb û qusûra misilmanekî veşêre Xwedê jî wê di roja qiyametê de wê qusûra wî veşêre." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٣٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (الْمُسْلِمُ أَخُو الْمُسْلِمِ لَا يَخُونُهُ وَلَا يَكْذِبُهُ وَلَا يَخْذُلُهُ، كُلُّ الْمُسْلِمِ عَلَى الْمُسْلِمِ حَرَامٌ. عِرْضُهُ وَمَالُهُ وَدَمُهُ، التَّقْوَى هَهُنَا بِحَسْبِ امْرِئٍ مِنَ الشَّرِّ أَنْ يَحْتَقِرَ أَخَاهُ الْمُسْلِمِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

234- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Misilman birayê misilman e. Lazim e zilmê li wî neke, û xiyanetê digel wî neke, lazim e wî mandel neke, lazim e wî şermezar neke, her misilman digel misilmanek din namûsa wî, malê wî, xûna wî li ser wî heram e. Teqwayî eva ye. Besî mirov e ku ji guneh, birayê xwe yê misilman kêm bibîne." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs di dereca hesen de ye.*

٢٣٥- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَحَاسَدُوا وَلَا تَنَاجَشُوا وَلَا تَبَاغَضُوا وَلَا تَدَابَرُوا، وَلَا يَبِعْ بَعْضُكُمْ عَلَى بَيْعِ بَعْضٍ، وَكُونُوا عِبَادَ اللَّهِ إِخْوَاناً، الْمُسْلِمُ أَخُو الْمُسْلِمِ لَا يَظْلِمُهُ وَلَا يَحْقِرُهُ وَلَا يَخْذُلُهُ، التَّقْوَى هَهُنَا) وَيُشِيرُ إِلَى صَدْرِهِ ثَلَاثَ مَرَّاتٍ (بِحَسْبِ امْرِئٍ مِنَ الشَّرِّ أَنْ يَحْقِرَ أَخَاهُ الْمُسْلِمَ، كُلُّ الْمُسْلِمِ عَلَى الْمُسْلِمِ حَرَامٌ دَمُهُ وَمَالُهُ وَعِرْضُهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

235- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hesûdiya hevdu nekin, di kirrîn û firotinê de hîlê li hevdu nekin, buxz û 'edawetê digel hevdu nekin, pişta xwe nedin hevdu, bazara hevdu xerab nekin. Ey 'îbadên Xwedê bibin birayên hevdu. Misilman birayê misilman e, li wî zilmê nake, wî tenê nahêle, wî piçûk nadinêre. Teqwayî eva ye." Pêxemberê Xwedê (s.) sê caran îşaret bi bal singa xwe ve dike. "Besî mirov e ji gunehî ku heqaretê digel birayê xwe yê misilman bike. "Temamê misilmanî li ser misilmanî heram e: xûna wî, malê wî û namûsa wî." *Muslim rîwayet kiriye.*

٢٣٦- عَنْ أَنَسٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَا يُؤْمِنُ أَحَدُكُمْ حَتَّى يُحِبَّ لِأَخِيهِ مَا يُحِبُّ لِنَفْسِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

236-Li gora rîwayeta Enes ji Resûlê Xwedê (s.) got: "Heta ku yek ji we wê tişta ku ji xwe re dixwaze ji bona birayê xwe nexwaze ewî bawerî ne aniye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٣٧- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (انْصُرْ أَخَاكَ ظَالِمًا أَوْ مَظْلُومًا) فَقَالَ رَجُلٌ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، أَنْصُرُهُ إِذَا كَانَ مَظْلُوماً، أَرَأَيْتَ إِنْ كَانَ ظَالِماً، كَيْفَ أَنْصُرُوهُ؟ قَالَ: (تَحْجُزُوهُ-أَوْ تَمْنَعُهُ-مِنَ الظُّلْمِ، فَإِنَّ ذلِكَ نَصْرُهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

237-Dîsa ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin. Got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Arîkariya birayê xwe bike çi zalim be û çi mezlûm be. Vêca li ser vê yekê miroekî got: Ya Resûlê Xwedê, ezê arîkariya wî bikim ger ku mezlûm be. Bes kanî tu ji bo min bibêje dê çawa arîkariya wî bikim, eger ew bi xwe zalim be? Pêxember (s.) got: Tu nehêle ew zilmê bike. Eva ye arîkariya wî." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٢٣٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (حَقُّ الْمُسْلِمِ عَلَى الْمُسْلِمِ خَمْسٌ: رَدُّ السَّلَامِ، وَعِيَادَةُ الْمَرِيضِ، وَاتِّبَاعُ الْجَنَائِزِ، وَإِجَابَةُ الدَّعْوَةِ، وَتَشْمِيتُ الْعَاطِسِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: (حَقُّ الْمُسْلِمِ عَلَى الْمُسْلِمِ سِتٌّ: إِذَا لَقِيتَهُ فَسَلِّمْ عَلَيْهِ، وَإِذَا دَعَاكَ فَأَجِبْهُ، وَإِذَا اسْتَنْصَحَكَ فَانْصَحْ لَهُ، وَإِذَا عَطَسَ فَحَمِدَ اللَّهَ فَشَمِّتْهُ، وَإِذَا مَرِضَ فَعُدْهُ، وَإِذَا مَاتَ فَاتَّبِعْهُ).

238-Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, bêşik Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Heqê misilman li ser misilman pênc in: Vegirtina selamê ye, Serdana nexweşiyê ye, çûyina digel cenazê ye, qebûlkirina gazîkirina wî ye û duakirina xêrê ye ji bona yê ku dibihênije (yanî jê re bêje: "Yerhemûkellah" Xwedê rehmê li te bike.) *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetek dî ya Muslim de: "Heqê misilman li ser misilman şeş in: Zemanê tu rastê wî hatî selamê bidiyî, wextê tu ezimandî îcabet bike, zemanê wî teleba şîretkirinê ji te kir tu jî nesîhetê li wî bike, wextê ew

bihêniji û got: *Elhemdu lîllah* tu jê re bêje *yerhemûkellah*, zemanê ew nexweş ket tu here serdana wî û wextê ew mir tu di merasima cenazê wî de peyda bibe."

٢٣٩- عَنْ أَبِي عُمَارَةَ الْبَرَاءِ بْنِ عَازِبٍ ﷺ قَالَ: أَمَرَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِسَبْعٍ وَنَهَانَا عَنْ سَبْعٍ: أَمَرَنَا بِعِيَادَةِ الْمَرِيضِ، وَاتِّبَاعِ الْجَنَازَةِ، وَتَشْمِيتِ الْعَاطِسِ، وَإِبْرَارِ الْقَسَمِ، أَوِ الْمُقْسِمِ وَنَصْرِ الْمَظْلُومِ، وَإِجَابَةِ الدَّاعِي، وَإِفْشَاءِ السَّلَامِ، وَنَهَانَا عَنْ خَوَاتِيمَ أَوْ عَنْ تَخَتُّمٍ بِالذَّهَبِ، وَعَنْ شُرْبٍ بِالْفِضَّةِ، وَعَنِ الْمَيَاثِرِ الْحُمْرِ، وَعَنِ الْقَسِّيِّ، وَعَنْ لُبْسِ الْحَرِيرِ وَالْإِسْتَبْرَقِ وَالدِّيبَاجِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: (وَإِنْشَادِ الضَّالَّةِ) فِي السَّبْعِ الأَوَّلِ.

239- Ji Ebû 'Umare Bera'ê kurê 'Azib (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) emrê me kir bi heft tiştan û men'a me kir ji heft tiştan. Emrê me kir bi serdana nexweşî, bi çûyina digel cenazeyî, bi dua xêrê ji bona yê ku di bihênije, yê ku sond bixwe em sonda wî bînin ciyê wê, bi arîkariya mezlûmî, bi qebûlkirina daweta yê ku diezimîne, bi belavkirina selamê di nav hev de. Men'a me kir ji wergirtina gustîlkên zêr, ji vexwarina di firaxên zîv de, ji 'emilandina şiltên sor, ji cilên têkilhev, ji wergirtina cilê hevrêşim, û cilê hevrîşim yê estûr, ji wergirtina cilê etlas."
*Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetek dî ya Muslim de: "Emrê me kir bi tarîfkirina tişta wendabûyî" di nav wan heft tiştên berê emirkirî de."

## بَابُ سَتر عَوْرَات الْمُسْلِمِين وَالنهي عَنْ إِشَاعَتِهَا لَغَيْرِ ضَرُورَة

## EV BAB DI DERHEQÊ VEŞARTINA 'EYBÊN MISILMANAN DE YE Û DI DERHEQÊ MEN'A BÊZERÛRET ÎFŞAKIRINA 'EYBAN DE YE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedê te'ala gotiye:

﴿إِنَّ الَّذِينَ يُحِبُّونَ أَنْ تَشِيعَ الْفَاحِشَةُ فِي الَّذِينَ آمَنُوا لَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ فِي الدُّنْيَا وَالْآخِرَةِ﴾

"Ew kesên ku dixwazin bêheyayî (yanî fê'la xerab) di nav wan kesên

ku bawerî anîn de belav bibe, di dunya û di axîretê de ji wan re 'ezabekî dijwar heye."[1]

٢٤٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَا يَسْتُرُ عَبْدٌ عَبْداً فِي الدُّنْيَا إِلَّا سَتَرَهُ اللَّهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ) رَوَاهُ مُسْلِم.

240-Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Her 'ebdê ku 'eyba 'ebdekî di dunyayê de veşêre Xwedê jî dê di axîretê de wî bistirîne." *Muslim rîwayet kiriye.*

٢٤١- وَعَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (كُلُّ أُمَّتِي مُعَافًى إِلَّا الْمُجَاهِرِينَ، وَإِنَّ مِنَ الْمُجَاهَرَةِ أَنْ يَعْمَلَ الرَّجُلُ بِاللَّيْلِ عَمَلاً ثُمَّ يُصْبِحَ وَقَدْ سَتَرَهُ اللَّهُ عَلَيْهِ فَيَقُولَ: يَا فُلَانُ، عَمِلْتُ الْبَارِحَةَ كَذَا وَكَذَا، وَقَدْ بَاتَ يَسْتُرُهُ رَبُّهُ وَيُصْبِحُ يَكْشِفُ سِتْرَ اللَّهِ عَنْهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

241-Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ji bilî eşkerekeran ummeta min tev 'efû bûne. Eşkerekirin ew e ku yek bi şev gunehekî bike, dema dibe sibeh ew radibe setra/perda Xwedê lê kiriye radike û dibêje: Hey filan keso! Min şeva din ev û ev kiriye. Xwedê bi şev ew stirandibû û ew radibe sibehî kifşe dike." *Muslim riwayet kiriye.*

٢٤٢- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِذَا زَنَتْ أَمَةُ أَحَدِكُمْ فَتَبَيَّنَ زِنَاهَا فَلْيَجْلِدْهَا الْحَدَّ وَلَا يُثَرِّبْ عَلَيْهَا ثُمَّ إِنْ زَنَتْ فَلْيَجْلِدْهَا الْحَدَّ وَلَا يُثَرِّبْ عَلَيْهَا ثُمَّ، إِنْ زَنَتِ الثَّالِثَةَ فَتَبَيَّنَ زِنَاهَا فَلْيَبِعْهَا وَلَوْ بِحَبْلٍ مِنْ شَعَرٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

242-Dîsa ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Zemanê cariya yekî ji we zina kir û li ser hate tesbîtkirin, bila wê hed bike, lêbelê bila lomeyan lê neke. Paşê heke dîsa zina kir bila wê hed bike, bes bila 'îtaban lê neke. Paşê eger cara sisyan zina kir bila bifroşe çendan bi werîsekê ji mûyê be jî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٤٣- وَعَنْهُ قَالَ: أُتِيَ النَّبِيُّ ﷺ بِرَجُلٍ قَدْ شَرِبَ خَمْراً قَالَ: (اضْرِبُوهُ) قَالَ أَبُو هُرَيْرَةَ:

1 Nûr, 24/19.

  

فَمِنَّا الضَّارِبُ بِيَدِهِ، وَالضَّارِبُ بِنَعْلِهِ وَالضَّارِبُ بِثَوْبِهِ، فَلَمَّا انْصَرَفَ قَالَ بَعْضُ الْقَوْمِ: أَخْزَاكَ اللَّهُ، قَالَ: (لَا تَقُولُوا هَكَذَا لَا تُعِينُوا عَلَيْهِ الشَّيْطَانَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

243-Dîsa ji wî hatiye rîwayetkirin got: Mirovek anîn cem Pêxemberê Xwedê (s.) eraq vexwaribû. Got: “Hûn li wî bidin.” Ebû Hureyre got: Vêca hindekan ji me bi destê xwe lêdan, hindekan bi telika xwe lêdan, hindekan jî bi cilê xwe lêdan. Wextê rabû û çû, ji cema‘etê yekî jê re got: Xwedê te rûswa bike. Resûlê Xwedê (s.) got: “Hûn wisan nebêjin, di ‘eleyhê wî de arîkariya şeytan nekin.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابٌ فِي قَضَاءِ حَوَائِجِ الْمُسْلِمِين

## EV BAB DI DERHEQÊ PÊKANÎNA HEWCEDARIYÊN MISILMANAN DE YE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xweda te‘ala gotiye:

﴿وَافْعَلُوا الْخَيْرَ لَعَلَّكُمْ تُفْلِحُونَ﴾

“Karê baş bikin da ku hûn xelas bibin.” [1]

٢٤٤- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ: (قَالَ الْمُسْلِمُ أَخُو الْمُسْلِمِ لَا يَظْلِمُهُ وَلَا يُسْلِمُهُ، وَمَنْ كَانَ فِي حَاجَةِ أَخِيهِ كَانَ اللَّهُ فِي حَاجَتِهِ، وَمَنْ فَرَّجَ عَنْ مُسْلِمٍ كُرْبَةً فَرَّجَ اللَّهُ عَنْهُ كُرْبَةً مِنْ كُرُبَاتِ يَوْمِ الْقِيَامَةِ، وَمَنْ سَتَرَ مُسْلِمًا سَتَرَهُ اللَّهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

244-Ji Îbnu ‘Umer (r.) hatiye rîwayetkirin bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Misilman birayê misilman e; zilmê lê neke û wî teslîmî neyarê wî neke. Çi kesê di hewcedariya birayê xwe de be, Xwedê jî di hewcedariya wî de ye. Her kesê xem û kederek ya misilman jê bibe Xwedê jî dê roja qiyametê de kederek ji kederên roja qiyametê jê bibe. Her kî ‘eyba misilmanekî bistirîne wê Xwedê jî roja qiyametê ‘eyba wî kesî bistirîne.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٤٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ: رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ نَفَّسَ عَنْ مُؤْمِنٍ كُرْبَةً مِنْ كُرَبِ

1 Hec, 22/77.

الدُّنْيَا نَفَّسَ اللَّهُ عَنْهُ كُرْبَةً مِنْ كُرَبِ يَوْمِ الْقِيَامَةِ، وَمَنْ يَسَّرَ عَلَى مُعْسِرٍ يَسَّرَ اللَّهُ عَلَيْهِ فِي الدُّنْيَا وَالْآخِرَةِ، وَمَنْ سَتَرَ مُسْلِمًا سَتَرَهُ اللَّهُ فِي الدُّنْيَا وَالْآخِرَةِ، وَاللهُ فِي عَوْنِ الْعَبْدِ مَا كَانَ الْعَبْدُ فِي عَوْنِ أَخِيهِ، وَمَنْ سَلَكَ طَرِيقًا يَلْتَمِسُ فِيهِ عِلْمًا سَهَّلَ اللَّهُ لَهُ بِهِ طَرِيقًا إِلَى الْجَنَّةِ، وَمَا اجْتَمَعَ قَوْمٌ فِي بَيْتٍ مِنْ بُيُوتِ اللَّهِ يَتْلُونَ كِتَابَ اللَّهِ وَيَتَدَارَسُونَهُ بَيْنَهُمْ إِلَّا نَزَلَتْ عَلَيْهِمُ السَّكِينَةُ وَغَشِيَتْهُمُ الرَّحْمَةُ وَحَفَّتْهُمُ الْمَلَائِكَةُ وَذَكَرَهُمُ اللَّهُ فِيمَنْ عِنْدَهُ، وَمَنْ بَطَّأَ بِهِ عَمَلُهُ لَمْ يُسْرِعْ بِهِ نَسَبُهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

245-Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Her kesê ji mu‘min kederek ji kederên dunyayê bibe, Xwedê te‘ala jî dê kederek ji kederên wî yên roja qiyametê bibe. Her kesê li ser mirovek destteng fire bike, wê Xwedê jî di dunya û axîretê de li ser wî fire bike. Her kesê ‘eyba misilmanekî veşêre Xwedê te‘ala jî dê di her du dunyan de ‘eyba wî veşêre. Xwedê arîkariya ‘ebdî de ye, hindî ‘ebd di arîkariya birayê xwe de ye. Çi kesê ji bo xwendina ‘ilmê di rêyekê de bimeşe Xwedê te‘ala dê rêya cennetê jê re xweş/hêsan bike. Çi merivên di malek ji malên Xwedê de kom bibin û kitêba Xwedê bixwînin û bi hevdu re muzakere bikin dê sukunet li ser wan nazil bibe û rehmet dê li wan bicive û melekên Xwedê jî dê li dora wan kom bibin û wê Xwedê te‘ala behsa wan li nav wan melekên li cem wî ne bike. Her kesê kar û ‘emelê wî ew şûnde hiştibe neseba wî, wî pêşde nabe.” *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ الشَّفَاعَة

## EV BAB DI DERHEQÊ MEHDERÊ DE YE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedê te‘ala gotiye:

﴿مَنْ يَشْفَعْ شَفَاعَةً حَسَنَةً يَكُنْ لَهُ نَصِيبٌ مِنْهَا﴾

“Her kesê mehderekê qenc bike, ji wê mehderê behra wî heye.”[1]

٢٤٦- عَنْ أَبِي مُوسَى ﵁ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا أَتَاهُ طَالِبُ حَاجَةٍ أَقْبَلَ عَلَى

1 Nîsa, 4/85.

جُلَسَائِهِ فَقَالَ: (اشْفَعُوا تُؤْجَرُوا، يَقْضِ اللَّهُ عَلَى لِسَانِ نَبِيِّهِ مَا أَحَبَّ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

246-Ji Ebû Mûsayê (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Zemanê daxwaza hewcedariyê bihata cem Pêxemberê Xwedê (s.), berê xwe dida yên li dor xwe rûniştî û digot: "Hûn ji bona vî mirovî mehder bikin hûn dê xwedanxêr bibin. Xwedê wê li ser zimanê Resûlê xwe tiştê ku jê hez bike pêk bîne." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٤٧- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ فِي قِصَّةِ بَرِيرَةَ وَزَوْجِهَا قَالَ: فَقَالَ لَهَا النَّبِيُّ ﷺ: (لَوْ رَاجَعْتِيهِ) قَالَتْ يَا رَسُولَ اللَّهِ تَأْمُرُنِي؟ قَالَ: (إِنَّمَا أَشْفَعُ) قَالَتْ: لَا حَاجَةَ لِي فِيهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

247-Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin, di qisseta Berîretê û mêrê wê de got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji wê re got: "Ma tu lê naziviri? Got: Ya Resûlê Xwedê, ma tu emrê min dikî (ku ez lê bizivirim?) Got: "Ez tenê mehderê dikim." Got: Hewcedariya min bi wî çunîne." *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ الْإِصْلَاحِ بَيْنَ النَّاسِ

## EV BAB DI DERHEQÊ ÇÊKIRINA AŞITIYA DI MABEYNA ÎNSANAN DE YE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedê te'ala gotiye:

﴿لَا خَيْرَ فِي كَثِيرٍ مِنْ نَجْوَاهُمْ إِلَّا مَنْ أَمَرَ بِصَدَقَةٍ أَوْ مَعْرُوفٍ أَوْ إِصْلَاحٍ بَيْنَ النَّاسِ﴾

"Di gelek axaftinên wan yên xef de xêr çunîne. Bes kesê emir bike bi sedeqekê, yan emrê me'rûfî bike, yan jî islaha nav mirovan bike."[1]

﴿وَالصُّلْحُ خَيْرٌ﴾

"Aşîtî baştir e."[2]

﴿فَاتَّقُوا اللَّهَ وَأَصْلِحُوا ذَاتَ بَيْنِكُمْ﴾

"Xwe biparêzin û di neqeba xwe de aşîtiyê çêkin."[3]

﴿إِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ إِخْوَةٌ فَأَصْلِحُوا بَيْنَ أَخَوَيْكُمْ﴾

"Bêşik bes bawermend birayên hevdu ne. Vêca hûn di nav birayên xwe

1 Nîsa, 4/114.
2 Nîsa, 4/128.
3 Enfal, 8/1.

de aşîtiyê çêbikin."[1]

٢٤٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (كُلُّ سُلَامَىْ مِنَ النَّاسِ عَلَيْهِ صَدَقَةٌ كُلَّ يَوْمٍ تَطْلُعُ فِيهِ الشَّمْسُ: تَعْدِلُ بَيْنَ الاِثْنَيْنِ صَدَقَةٌ، وَتُعِينُ الرَّجُلَ فِي دَابَّتِهِ فَتَحْمِلُهُ عَلَيْهَا أَوْ تَرْفَعُ لَهُ عَلَيْهَا مَتَاعَهُ صَدَقَةٌ، وَالْكَلِمَةُ الطَّيِّبَةُ صَدَقَةٌ وَكُلُّ خُطْوَةٍ تَمْشِيهَا إِلَى الصَّلَاةِ صَدَقَةٌ، وَتُمِيطُ الأَذَى عَنِ الطَّرِيقِ صَدَقَةٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

248- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Li ser her movikek ji însanan sedeqeyek dikeve. Di her roja ku roj tê de derdikeve de, di neqeba du mirovan de tu 'edaletê bikî, dibe sedeqe. Tu arîkariya mirovekî bikî, barê dewara wî lê bikî, yan jî barê wê jê deynî xwarê sedeqe ye. Gotinek xweş sedeqe ye. Bi her gava tu pê herî nimêjê dibe sedeqeye. Tu stiriyekî, kelemekî ji rê bidî aliyekî dibe sedeqe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٤٩- عَنْ أُمِّ كُلْثُومٍ بِنْتَ عُقْبَةَ بن أَبِي معيط ﷺ قَالَتْ: سَمِعَتْ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ. (لَيْسَ الْكَذَّابُ الَّذِي يُصْلِحُ بَيْنَ النَّاسِ فَيَنْمِي خَيْراً أَوْ يَقُولُ خَيْراً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةِ مُسْلِمٍ زِيَادَةٌ قَالَتْ: وَلَمْ أَسْمَعْهُ يُرَخِّصُ فِي شَيْءٍ مِمَّا يَقُولُهُ النَّاسُ إِلَّا فِي ثَلَاثٍ: تَعْنِى الْحَرْبُ، وَالْإِصْلَاحُ بَيْنَ النَّاسِ، وَحَدِيثُ الرَّجُلِ إِمْرَأَتَهُ، وَحَدِيثُ الْمَرْأَةِ زَوْجَهَا.

249-Ji Ummu Gulsûm keça 'Uqbeyê kurê Mueyt (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst digot: "Derewker ew kes nîne ku silaheta/aşîtiya mirovan bike ku xêrê bigihîne û yan jî xêrê bêje." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetek ya Muslim de ev ziyade heye: "Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) nebihîstiye ku ruxset daye van tiştên ku mirov dibêjin, ji bilî van sê tiştan: Di herbê de, di silaheta/aştiya neqeba însanan de û di axaftina mirov digel jinika xwe û axaftina jinikê digel mêrê xwe."

٢٥٠- عَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: سَمِعَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ صَوْتَ خُصُومٍ بِالْبَابِ عَالِيَةٍ

1 Hucurat, 49/10.

  

أَصْوَاتُهُمَا، إِذَا أَحَدُهُمَا يَسْتَوْضِعُ الآخَرَ وَيَسْتَرْفِقُهُ فِي شَيْءٍ، وَهُوَ يَقُولُ: وَاللَّهِ لَا أَفْعَلُ. فَخَرَجَ عَلَيْهِمَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: (أَيْنَ الْمُتَأَلِّي عَلَى اللَّهِ لَا يَفْعَلُ الْمَعْرُوفَ) فَقَالَ: أَنَا يَا رَسُولَ اللَّهِ، وَلَهُ أَيُّ ذَلِكَ أَحَبَّ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

250-Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Rojekê li ber derî Pêxemberê Xwedê (s.) dengê du mirovên bi dengek bilind şer dikirin bihîst. Yekî ji wan ji yê din dixwest hindek ji deynê wî li ser wî deynî (kêm bike) û sanehiyê digel wî bike. Lêbelê wî kesî digot: Wellah –sond dixwim– ez nakim. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) derket çû cem wan û got: "Kanê ew kesê ku bi Xwedê sond dixwe ku îşê baş nake?" Wî kesî got: Ez im ya Resûlê Xwedê. Ew çawa hez dike bila bi gotina wî be. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٥١- عَنْ أَبِي الْعَبَّاسِ سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ السَّاعِدِيِّ رضي الله عنه أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ بَلَغَهُ اَنَّ بَنِي عَمْرِو بْنِ عَوْفٍ كَانَ بَيْنَهُمْ شَرٌّ، فَخَرَجَ رَسُولُ الله ﷺ يُصْلِحُ بَيْنَهُمْ فِى اُنَاسٍ مَعَهُ، فَحُبِسَ رَسُولُ الله ﷺ وَحَانَت الصَّلَاةِ، فَجَاءَ بِلَالٌ إِلَى أَبِي بَكْرٍ رضي الله عنه فَقَالَ: يَا أَبَا بَكْرٍ، إِنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَدْ حُبِسَ، وَحَانَتِ الصَّلَاةُ، فَهَلْ لَكَ اَنْ تَؤُمَّ النَّاسُ؟ قَالَ: نَعَمْ اِنْ شِئْتَ. فَأَقَامَ بِلَالٌ اَلصَّلَاةَ، وَتَقَدَّمَ أَبُو بَكْرٍ فَكَبَّرَ وَكَبَّرَ النَّاسُ، وَجَاءَ رَسُولُ الله ﷺ يَمْشِى فِي الصُّفُوفِ حَتَّى قَامَ فِي الصَّفِّ، فَأَخَذَ النَّاسُ فِي التَّصْفِيقِ، وَكَانَ أَبُو بَكْرٍ رضي الله عنه لَا يَلْتَفِتُ فِي الصَّلَاةِ، فَلَمَّا اَكْثَرَ النَّاسُ التَّصْفِيقَ اِلْتَفَتَ، فَاِذَا رَسُولُ الله ﷺ، فَأَشَارَ إِلَيْهِ رَسُولُ الله ﷺ فَرَفَعَ اَبُو بَكْرٍ رضي الله عنه يَدَهُ، فَحَمِدَ اللَّهَ، وَرَجَعَ الْقَهْقَرَى وَرَاءَهُ حَتَّى قَامَ فِي الصَّفِّ، فَتَقَدَّمَ رَسُولُ الله ﷺ فَصَلَّى لِلنَّاسِ، فَلَمَّا فَرَغَ أَقْبَلَ عَلَى النَّاسِ فَقَالَ: (أَيُّهَا النَّاسُ، مَا لَكُمْ حِينَ نَابَكُمْ شَيْءٌ فِى الصَّلَاةِ أَخَذْتُمْ فِي التَّصْفِيقِ؟ إِنَّمَا التَّصْفِيقُ لِلنِّسَاءِ، مَنْ نَابَهُ شَيْءٌ فِى صَلَاتِهِ فَلْيَقُلْ: سُبْحَانَ اللَّهِ، فَإِنَّهُ لَا يَسْمَعُهُ أَحَدٌ حِينَ يَقُولُ: سُبْحَانَ اللَّهِ إِلَّا الْتَفَتَ يَا أَبَا بَكْرٍ، مَا مَنَعَكَ أَنْ تُصَلِّيَ بِالنَّاسِ حِينَ أَشَرْتُ إِلَيْكَ؟) فَقَالَ أَبُو بَكْرٍ: مَا كَانَ يَنْبَغِى لِابْنِ أَبِي قُحَافَةَ اَنْ يُصَلِّيَ بِالنَّاسِ بَيْنَ يَدَىْ رَسُولِ الله ﷺ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

251-Ji Ebû ‘Ebbas Sehl kurê Se‘dê Sa‘idî (r.) hatiye rîwayetkirin. Beşik xeber gihîşte Pêxemberê Xwedê (s.) ku di neqeba bavikên Benî ‘Emrê kurê ‘Ewf de nexweşiyek heye. Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) bi çendekan re derket da ku here wan li hevdu bîne. Dema ku Pêxemberê Xwedê bi hevhatina wan ve mijûl bû, wextê nimêjê hat. Li ser vê yekê Bilalê Hebeşî hate cem Ebû Bekir (r.) û got: Ya Ebû Bekir, bêguman Resûlullah bi sulhê ve mijûl e. Tu dikarî pêşya însanan nimêj bikî? Got: Belê. Eger te bivê dikarim. Vêca Bilal qameta nimêjê anî û Ebû Bekir çû pêşyê tekbîra nimêjê anî, însanan jî tekbîr anîn. Pêxemberê Xwedê hat di nav sefan de meşiya ta di seffê de bi cih bû. Li ser vê yekê cema‘et rabûn destê xwe li hevdu dan. Ebû Bekir di nimêjê de berê xwe nedizivirand. Wextê cema‘etê destê xwe zahftir li hevêdu dan, Ebû Bekir paşve nihêrî dît ku Pêxemberê Xwedê wa di seffê de ye. Resûlê Xwedê jê re îşaretkir (ku dewam bike) lêbelê Ebû Bekir (r.) destê xwe rakir û hemdê Xwedê kir û paşve paşve hat ta kete seffê de. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) pêşve çû û li pêşiya mirovan nimêj kir. Zemanê ji nimêjê vala bû, berê xwe de însanan û got: “Gelî mirovan! Ev çi ye wextê tiştek di nimêjê de li we peyda dibe hûn destên xwe li hev didin? Destkûtan bes ya jinan e. Her kesê di nimêjê de tiştek lê peyda bibe, bila ew bêje: “Subhanellah.” Çunkî her kesê gotina “Subhanellah” bibihîze mitleqa wê berê xwe bide. Ey Ebû Bekir! Wextê min ji te re îşaret kir te çima nimêj dewam nekir?” Ebû Bekir got: Layiq û babetê kurê Ebû Quhafe nîne di hizûra Resûlê Xwedê pêşiya însanan îmametiyê bike.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ فَضْلُ الْمُسْلِمِين وَالْفُقَرَاء والْخَامِلِين

## SERDESTIYA MISILMANÊN ZE’ÎF Û YÊN FEQÎR Û YÊN NAV Û DENGÊ WAN NAYÊ XWENDIN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَاصْبِرْ نَفْسَكَ مَعَ الَّذِينَ يَدْعُونَ رَبَّهُمْ بِالْغَدَاةِ وَالْعَشِيِّ يُرِيدُونَ وَجْهَهُ وَلَا تَعْدُ عَيْنَاكَ عَنْهُمْ﴾

“(Ya Muhemmed!) Tu nefsa xwe digel wan kesên ku di sibeh û êvaran de gazî de Rebbê xwe dikin û daxwaza razîbûna wî dikin hepis bike. Çavên

xwe ji wan venegerîne."[1]

٢٥٢- عَنْ حَارِثَةَ بْنِ وَهْبٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ: (يَقُولُ أَلَا أُخْبِرُكُمْ بِأَهْلِ الْجَنَّةِ؟ كُلُّ ضَعِيفٍ مُتَضَاعِفٍ لَوْ أَقْسَمَ عَلَى اللَّهِ لأَبَرَّهُ، أَلَا أُخْبِرُكُمْ بِأَهْلِ النَّارِ كُلُّ عُتُلٍّ جَوَّاظٍ مُسْتَكْبِرٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

252-Ji Haris kurê Wehb (r.), gotiye: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, digot: "Ez ji we re bêjim ku ehlê cennetê kî ne? Hemû misilmanên belengaz û dilnizm in ku ji aliyê gel ve kêm têne dîtin. Heger ew bi Xwedê sond bixwe dê Xwedê sonda wî bîne cî. Ez we agahdar bikim ku ehlê cehennemê kî ne? Çiqas kesê dilhişk û heqiyê qebûl nake û pozbilindayê dikeye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٥٣- عَنْ أَبِي العباس سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ السَّاعِدِيِّ ﷺ قَالَ: مَرَّ رَجُلٌ عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ لِرَجُلٍ عِنْدَهُ جَالِسٍ: (مَا رَأْيُكَ فِي هَذَا الرَّجُلِ؟) قَالَ: هَذَا مِنْ أَشْرَافِ النَّاسِ: هَذَا حَرِيٌّ إِنْ خَطَبَ أَنْ يُنْكَحَ، وَإِنْ شَفَعَ أَنْ يُشَفَّعَ، فَسَكَتَ النَّبِيُّ ﷺ ثُمَّ مَرَّ رَجُلٌ آخَرُ فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (مَا رَأْيُكَ فِي هَذَا؟) فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ هَذَا مِنْ فُقَرَاءِ الْمُسْلِمِينَ، هَذَا حَرِيٌّ إِنْ خَطَبَ لَمْ يُنْكَحْ، وَإِنْ شَفَعَ لَا يُشَفَّعْ، وَإِنْ قَالَ لَا يُسْمَعْ لِقَوْلِهِ، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (لَهَذَا خَيْرٌ مِنْ مِلْءِ الأَرْضِ مِثْلَ هَذَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

253-Ji Ebul-'Ebbas Sehlê kurê Se'd Sa'idî (r.), gotiye: Mirovek di ber Pêxemberê Xwedê re (s.) borî. Resûlê Xwedê mirovekî li cem wî rûniştîbû jê re got: "Tu derbarê vî mirovî de çi dibêjî? Ewî ji got: Ew mirovek rûmetdar e; ez bi navê Xwedê sond dixwim ku ev mirov eger daxwaza mahra jinekê bike an di tiştekî de mehderê bike şirjaw/layiq e ku daxwaza wî bê qebûl kirin. Pêxemberê Xwedê (s.) sukut kir. Paşê mirovek dîtir derbas bû. Resûlê Ekrem (s.) got: "Tu derbarê vî mirovî de çi dibêjî? Ewî jî got: Ya Resûlê Xwedê eva, ji belengazê misilmanan e. Heger ewa daxwaza mahra jinekê bike an di tiştekî de mehderê bike an jî gotinekê bêje ne la'iq e ku daxwaza wî bê qebûl kirin û gotina wî jê bê bihîstin. Li ser vê yekê Resûlê Xwedê

1 Kehf, 18/28.

(s.) got: “Ev mirovê han ê belengaz, xêrtir e ji tevekê yên wek wî yê ku dunya tije kirine.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٥٤- عَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (احْتَجَّتِ الْجَنَّةُ وَالنَّارُ فَقَالَتِ النَّارُ: فِيَّ الْجَبَّارُونَ وَالْمُتَكَبِّرُونَ، وَقَالَتِ الْجَنَّةُ: فِيَّ ضُعَفَاءُ النَّاسِ وَمَسَاكِينُهُمْ، فَقَضَى اللَّهُ بَيْنَهُمَا إِنَّكِ الْجَنَّةُ رَحْمَتِي أَرْحَمُ بِكِ مَنْ أَشَاءُ، وَإِنَّكِ النَّارُ عَذَابِي أُعَذِّبُ بِكِ مَنْ أَشَاءُ مِنْ عِبَادِي، وَلِكِلَيْكُمَا عَلَيَّ مِلْؤُهَا). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

254- Ji Ebû Se‘îdê Xudrî (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.), gotiye: “Behişt [cennet] û agir [cehennem] munaqeşe kirin. Êgir got: Yên xedar û pozbilind li cem min peyda dibin (yanî pesnê xwe da). Cennetê jî got: Mirovên belengaz û yên miskîn li cem min peyda dibin (yanî îftixar kir). Xwedê (c.c.) bi vî awayî di neqeba wan de darizand: Ey cennet! Tu rehmeta min î. Kesê min bivê ezê bi te rehma xwe lê bikim. Heçîka tu yî ey agir! Tu ‘ezabê min î. Kesê min bivê ezê bi te wî ezab bikim. Tijîbûna we her duyan li ser min e. *Muslim rîwayet kiriye.*

٢٥٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّهُ لَيَأْتِي الرَّجُلُ الْعَظِيمُ السَّمِينُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ لَا يَزِنُ عِنْدَ اللَّهِ جَنَاحَ بَعُوضَةٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

255-Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.), gotiye: Di roja qiyametê de mirovê di dunyayê de mezin hatî naskirin tê, lêbelê wekî baskê pêşûyê jî li bal Xwedê qedrê wî tuneye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٥٦- وَعَنْهُ أَنَّ إِمْرَأَةً سَوْدَاءَ كَانَتْ تَقُمُّ الْمَسْجِدَ أَوْ شَابّاً، فَفَقَدَهَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَسَأَلَ عَنْهَا أَوْ عَنْهُ، فَقَالُوا: مَاتَ، قَالَ: (أَفَلَا كُنْتُمْ آذَنْتُمُونِي بِهِ؟) فَكَأَنَّهُمْ صَغَّرُوا أَمْرَهَا أَوْ أَمْرَهُ، فَقَالَ: (دُلُّونِي عَلَى قَبْرِهِ) فَدَلُّوهُ فَصَلَّى عَلَيْهَا ثُمَّ قَالَ: (إِنَّ هَذِهِ الْقُبُورَ مَمْلُوءَةٌ ظُلْمَةً عَلَى أَهْلِهَا، وَإِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ يُنَوِّرُهَا لَهُمْ بِصَلَاتِي عَلَيْهِمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

256-Dîsa ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin: Bêguman jinekê reş û yan jî xortekî reş mizgeft dimalişt. Wexta Resûlê Xwedê ew jinik û yan jî ew xort li ser şixulê wan nedît pirsiyara wê jinikê an wî xortî kir. Gotin ew

miriye. Resûlê Xwedê got: Bo çi we ez pê nehesandim? Eshaban ew kêm hesibandibûn. Pêxemberê Xwedê got: Gora wî nîşanî min bidin. Eshaban gora wî nîşanî Resûlê Xwedê (s.) dan. Resûlê Xwedê li ser wê gorê nimêj kir, paşê jî got: Ev gorên han li ser xwedanê xwe tijî bi tarîtî ne. Bêguman Xweda ('ezze we celle) bi nimêjkirina min li ser wan, gorên wan ronahî dike. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٥٧- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (رُبَّ أَشْعَثَ أَغْبَرَ مَدْفُوعٍ بِالأَبْوَابِ لَوْ أَقْسَمَ عَلَى اللَّهِ لأَبَرَّهُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

257-Dîsa ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin gotiye: Pêxemberê Xwedê (s.), gotiye: "Gelek mirovên ku porê serê wan bela bûye û tozê de maye û hatine avêtin li ber deriyan hene. Heger ewana li ser karekî bi Xwedê sond bixwin wê Xwedê (c.c.) sonda wan bi cî bîne." *Muslim rîwayet kiriye.*

٢٥٨- عَنْ أُسَامَةَ بْنِ زَيْدٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (قُمْتُ عَلَى بَابِ الْجَنَّةِ فَإِذَا عَامَّةُ مَنْ دَخَلَهَا الْمَسَاكِينُ، وأَصْحَابُ الْجَدِّ مَحْبُوسُونَ، إِلَّا أَصْحَابَ النَّارِ فَقَدْ أُمِرَ بِهِمْ إِلَى النَّارِ، وَقُمْتُ عَلَى بَابِ النَّارِ فَإِذَا عَامَّةُ مَنْ دَخَلَهَا النِّسَاءُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

258-Ji Usame yê kurê Zeyd (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.), gotiye: "Ez li ber derê cennetê sekinîm, min dît ku ên daxilî wê dibin gelekê wan miskîn in.[1] Heçî yên dewlemend bûn, ji bona çûyina cennetê hê îzna wan nehatibû dayin. Bes ehlê êgir ji bona ketina êgir îzna wan hatibû dayin. Û ez li ser dergehê dojehê rawestiyam, min dît ku zehfê ehlê wê jin bûn." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٥٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ: (قَالَ لَمْ يَتَكَلَّمْ فِي الْمَهْدِ إِلَّا ثَلَاثَةٌ: عِيسَى ابْنُ مَرْيَمَ، وَصَاحِبُ جُرَيْجٍ، وَكَانَ جُرَيْجٌ رَجُلاً عَابِدًا فَاتَّخَذَ صَوْمَعَةً فَكَانَ فِيهَا، فَأَتَتْهُ أُمُّهُ وَهُوَ يُصَلِّي فَقَالَتْ: يَا جُرَيْجُ، فَقَالَ يَا رَبِّ أُمِّي وَصَلَاتِي، فَأَقْبَلَ عَلَى صَلَاتِهِ فَانْصَرَفَتْ، فَلَمَّا كَانَ مِنَ الْغَدِ أَتَتْهُ وَهُوَ يُصَلِّي، فَقَالَتْ: يَا جُرَيْجُ، فَقَالَ: يَا رَبِّ أُمِّي وَصَلَاتِي فَأَقْبَلَ عَلَى صَلَاتِهِ، فَانْصَرَفَتْ فَلَمَّا كَانَ مِنَ الْغَدِ أَتَتْهُ وَهُوَ يُصَلِّي فَقَالَتْ:

1 **Miskîn**: Yên ku di dunyayê de halteng in.

يَا جُرَيْجُ فَقَالَ أَيْ رَبِّ أُمِّي وَصَلَاتِي فَأَقْبَلَ عَلَى صَلَاتِهِ، فَقَالَتِ: اللَّهُمَّ لَا تُمِتْهُ حَتَّى يَنْظُرَ إِلَى وُجُوهِ الْمُومِسَاتِ، فَتَذَاكَرَ بَنُو إِسْرَائِيلَ جُرَيْجًا وَعِبَادَتَهُ، وَكَانَتِ امْرَأَةٌ بَغِيٌّ يُتَمَثَّلُ بِحُسْنِهَا، فَقَالَتْ: إِنْ شِئْتُمْ لَأَفْتِنَنَّهُ لَكُمْ، قَالَ: فَتَعَرَّضَتْ لَهُ فَلَمْ يَلْتَفِتْ إِلَيْهَا، فَأَتَتْ رَاعِيًا كَانَ يَأْوِي إِلَى صَوْمَعَتِهِ، فَأَمْكَنَتْهُ مِنْ نَفْسِهَا فَوَقَعَ عَلَيْهَا فَحَمَلَتْ، فَلَمَّا وَلَدَتْ قَالَتْ: هُوَ مِنْ جُرَيْجٍ، فَأَتَوْهُ فَاسْتَنْزَلُوهُ وَهَدَمُوا صَوْمَعَتَهُ وَجَعَلُوا يَضْرِبُونَهُ، فَقَالَ: مَا شَأْنُكُمْ؟ قَالُوا: زَنَيْتَ بِهَذِهِ الْبَغِيِّ فَوَلَدَتْ مِنْكَ، فَقَالَ: أَيْنَ الصَّبِيُّ؟ فَجَاءُوا بِهِ فَقَالَ: دَعُونِي حَتَّى أُصَلِّيَ فَصَلَّى، فَلَمَّا انْصَرَفَ أَتَى الصَّبِيَّ فَطَعَنَ فِي بَطْنِهِ وَقَالَ: يَا غُلَامُ مَنْ أَبُوكَ؟ قَالَ: فُلَانٌ الرَّاعِي، قَالَ فَأَقْبَلُوا عَلَى جُرَيْجٍ يُقَبِّلُونَهُ وَيَتَمَسَّحُونَ بِهِ وَقَالُوا: نَبْنِي لَكَ صَوْمَعَتَكَ مِنْ ذَهَبٍ، قَالَ: لَا، أَعِيدُوهَا مِنْ طِينٍ كَمَا كَانَتْ، فَفَعَلُوا، وَبَيْنَمَا صَبِيٌّ يَرْضَعُ مِنْ أُمِّهِ فَمَرَّ رَجُلٌ رَاكِبٌ عَلَى دَابَّةٍ فَارِهَةٍ وَشَارَةٍ حَسَنَةٍ فَقَالَتْ أُمُّهُ: اللَّهُمَّ اجْعَلِ ابْنِي مِثْلَ هَذَا، فَتَرَكَ الثَّدْيَ وَأَقْبَلَ إِلَيْهِ فَنَظَرَ إِلَيْهِ، فَقَالَ: اللَّهُمَّ لَا تَجْعَلْنِي مِثْلَهُ، ثُمَّ أَقْبَلَ عَلَى ثَدْيِهِ فَجَعَلَ يَرْتَضِعُ قَالَ فَكَأَنِّي أَنْظُرُ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَهُوَ يَحْكِي ارْتِضَاعَهُ بِإِصْبَعِهِ السَّبَّابَةِ فِي فَمِهِ فَجَعَلَ يَمُصُّهَا ثُمَّ قَالَ وَمَرُّوا بِجَارِيَةٍ وَهُمْ يَضْرِبُونَهَا وَيَقُولُونَ: زَنَيْتِ، سَرَقْتِ، وَهِيَ تَقُولُ: حَسْبِيَ اللَّهُ وَنِعْمَ الْوَكِيلُ، فَقَالَتْ أُمُّهُ: اللَّهُمَّ لَا تَجْعَلِ ابْنِي مِثْلَهَا، فَتَرَكَ الرَّضَاعَ وَنَظَرَ إِلَيْهَا، فَقَالَ: اللَّهُمَّ اجْعَلْنِي مِثْلَهَا، فَهُنَاكَ تَرَاجَعَا الْحَدِيثَ، فَقَالَتْ: مَرَّ رَجُلٌ حَسَنُ الْهَيْئَةِ، فَقُلْتُ: اللَّهُمَّ اجْعَلِ ابْنِي مِثْلَهُ فَقُلْتَ: اللَّهُمَّ لَا تَجْعَلْنِي مِثْلَهُ، وَمَرُّوا بِهَذِهِ الْأَمَةِ وَهُمْ يَضْرِبُونَهَا وَيَقُولُونَ زَنَيْتِ، سَرَقْتِ فَقُلْتُ: اللَّهُمَّ لَا تَجْعَلِ ابْنِي مِثْلَهَا، فَقُلْتَ: اللَّهُمَّ اجْعَلْنِي مِثْلَهَا، قَالَ: إِنَّ ذَلِكَ الرَّجُلَ كَانَ جَبَّاراً، فَقُلْتُ: اللَّهُمَّ لَا تَجْعَلْنِي مِثْلَهُ، وَإِنَّ هَذِهِ يَقُولُونَ لَهَا زَنَيْتِ وَلَمْ تَزْنِ، وَسَرَقْتِ وَلَمْ تَسْرِقْ، فَقُلْتُ: اللَّهُمَّ اجْعَلْنِي مِثْلَهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

259-Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.), gotiye: “Ji xeynê sê

piçûkan di mehdikê[1] de neaxaftine.

1- Îsayê kurê Meryemê.

2-Sahib Cureyc. Cureyc mirovekî 'abid bû. Îbadetxanek ji bo xwe çêkiribû, tê de îbadet dikir. Vêca dayika wî hate cem wî, welhal ew li ser nimêjê bû. Wê gazî wî kir got: Ya Cureyc! Cureyc got: Ya Reb! Ez li ser nimêjê me û dayika min gazî min dike. Ezê çawa bikim? Nimêja xwe berdewam kir. Sibetirê dîsa dayika wî hat lêbelê ew dîsa li ser nimêjê bû. Gazî wî kir got: Ya Cureyc! Cureyc got: Ya Rebbê min! Ez li ser nimêjê me û dayika min gazî min dike? Dîsa berê xwe da nimêja xwe. Li ser vê yekê dayika wî got: Ya îlahê min! Heta ew rûyên jinikên zinaker nebîne tu ruhê wî nestînî (yanî dayika wî nifir lê kir). Rojekê Benî Îsraîliyan di derbarê Cureyc û di derbarê îbadetê wî de diaxaftin, jinek fahişe ku bi spehîtiya xwe navdar bû ew jî li cem wan bû. Wê fahişê got: Ger hûn bixwazin ez dikarim ewî ji rê derbixim. Jinik li dora Cureyc hat û çû, lêbelê wî qet guhê xwe nedayê. "Wextê fahişê zanî ku ew 'abid guh li wê nake" rabû çû cem şivanekî ku bi şev di îbadetxana 'abidî dima. Jinikê xwe teslîmî wî şivanî kir û şivan jî digel wê fahîşê zina kir. Jinik ji wî hemle/giran bû û zarokek ji wan hate dunyayê. Jinika fahişe got: Ev zarok ji Cureyc çêbûye. Li ser vê bûyerê Benî Îsraîl hatin li ser serê Cureyc kombûn û ji îbadetxana wî derxistin û îbadetxana wî hilweşandin û bidest lêdana wî kirin. Cureyc got: Ji bo çi hûn wiha dikin? Wan gotin: Te digel vê jinikê zina kiriye û ev zaroka han jî ji te çêbûye. Cureyc got: Ew zarok li kê ye? Wana ew zarok anîn cem Cureyc. Cureyc got: Hûn sebir bikin heta ku ez nimêj bikim. Wî nimêj kir, wextê ji nimêjê vala bû, hate cem zarokê bi tiliya xwe li zikê zarokê da û got: Ey zarok bavê te çi kes e? Zarokê got: Filan şivan e. Li ser vê yekê xelk rabûn berê xwe dane Cureyc û ew maç kirin û destên xwe li ser cesedê wî anîn û birin û gotin: Emê îbadetxana te ji zêr çêkin. Cureyc got: Naxêr. Dîsa wekî berê ji heriyê çêkin. Wan jî wekî gotina wî kirin.

3- Di demekê de zarokek li ber singa dayika xwe bû şîr dimêt. Mirovek siwarê hespekî rehwal bi xemûrîş xwe xemlandî bi çek û cilê baş borî. Dema ku çavên wê pêket kêfa jinikê pê re hat û got: Ey Xwedayê min! Tu kurê min bigerinî wekî vî sîwarî. Li ser vê yekê zarokê memkê xwe hêla û berê xwe de wî mirovê siwar û lê nihêrî û got: Ya Xwedayê min! Tu min nekî wekî vî sîwarî. Paşê jî berê xwe de li ser memkê xwe û dest bi mêtinê kir. Rawiyê hedîsê dibêje: "Her wekî ez li Pêxemberê Xwedê (s.) dinêrim û wî hikayet dikir ji mêtina wî zarokê memkê dayika xwe –bi tiliya xwe ya şehadetê ya

1 **Mehdik**: Landik, dergûş.

mubarek de devê xwe yê mubarek de û dimêt." Paşê jî Pêxemberê Xwedê (s.) got: Li ber cariyekê re borîn, ji wê re digotin te zina kiriye, te dizî kiriye. Vêca li wê dixistin. Welhal Cariyê jî digot: Xwedê te'ala besî min e û xweş wekîl e. Li ser vê yekê dayika zarokê got: Ya Xwedayê min! Tu vî kurkê negerînî wekî vê jinikê. Vêca zarokê terka vexwarina şîrê xwe kir û berê xwe da wê jinikê û got: Ya Xwedayê min! Tu min bigerînî wekî vê jinikê. Li ser vê yekê her dukan (yanî zarokê û dayika xwe) dest bi axaftinê kirin ji bona dayik bizane sedemê muxalefeta kurê wê çi ye? Dayikê got: Kurê min mirovek çespan (yanî jêhatî bi ser û ber) borî, min got: Ey Xweda! Tu kurê min bigerînî wekî vî. Te got: Ya Xweda! Tu min negerînî wekî wî. Em di ber vê cariyê re derbas bûn me dît ku hindek mirov li ser serê wê kom bûne û li wê didin. Wexta ku min wisa dît ez pê êşiyam û min got: Ya Xwedayê min! Tu vî kurkê min nekî wekî vê jinikê. Te jî got: Ya Xwedayê min! Tu min bigerînî wekî wê jinikê. Kanê sedema wê çi bû? Zarokê got: Ew mirov mirovek xedar bû. Vêca min jî got: Ya Xweda! Tu min nekî wekî wî mirovî. Ya rastî ev jinika hanê ku jê re dibêjin te zina kiriye, te dizî kiriye, ewê ne zina kiriye ne jî dizî kiriye. Vêca min jî got: Ey Xwedayê min, tu min bigerîni wekî wê jinika bêguneh." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ مُلَاطَفَةُ الْيَتِيمِ وَالْبَنَاتِ وَسَائِرِ الضَّعَفَةِ وَالْمَسَاكِينْ

## XWEŞBORANDIN Û DILNIZMÎ DIGEL SÊWÎ Û KEÇIKAN Û DIGEL ZE'ÎF Û MISKÎNÊN XEYNÊ WAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَاخْفِضْ جَنَاحَكَ لِلْمُؤْمِنِينَ﴾

"Ji bona mu'minan baskê xwe daxîne (xwe bişkîne, digel wan şefqetê bike û merhemetê bike.)"[1]

﴿وَاصْبِرْ نَفْسَكَ مَعَ الَّذِينَ يَدْعُونَ رَبَّهُمْ بِالْغَدَاةِ وَالْعَشِيِّ يُرِيدُونَ وَجْهَهُ وَلَا تَعْدُ عَيْنَاكَ عَنْهُمْ تُرِيدُ زِينَةَ الْحَيَاةِ الدُّنْيَا﴾

"(Ya Muhemmed) Tu nefsa xwe hepis bike digel wan kesên ku di sibeh û êvaran de gazî Rebbê xwe dikin û daxwaza razîbûna wî dikin. Tu ji bona tazebûna heyata dunyayê çavên xwe ji wan venegerîne."[2]

1 Hîcr, 15/88.
2 Kehf, 18/28.

﴿فَأَمَّا الْيَتِيمَ فَلَا تَقْهَرْ ۞ وَأَمَّا السَّائِلَ فَلَا تَنْهَرْ﴾

"Heçîka sêwî ne tu wan neêşîne û heçîka daxwazkar in tu wan neazirîne.[1] (An tiştekî bide wan û yan jî bi nermî wan vegerîne.)"[2]

﴿أَرَأَيْتَ الَّذِي يُكَذِّبُ بِالدِّينِ ۞ فَذَلِكَ الَّذِي يَدُعُّ الْيَتِيمَ ۞ وَلَا يَحُضُّ عَلَى طَعَامِ الْمِسْكِينِ﴾

"Ew kesê roja cezayê (qiyametê) mandel dike –yanî bi derew zanî– te dît? Ew mirovek wisa ye sêwiyî dide ber dehfan (bêqedir dizane) û teşwîqa xeynê xwe nake li ser têrkirina miskîn û birçiyan."[3]

٢٦٠- عَنْ سَعْدِ بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ ﷺ قَالَ: كُنَّا مَعَ النَّبِيِّ ﷺ سِتَّةَ نَفَرٍ، فَقَالَ الْمُشْرِكُونَ لِلنَّبِيِّ ﷺ: اطْرُدْ هَؤُلَاءِ لَا يَجْتَرِئُونَ عَلَيْنَا، قَالَ: وَكُنْتُ أَنَا وَابْنُ مَسْعُودٍ وَرَجُلٌ مِنْ هُذَيْلٍ وَبِلَالٌ وَرَجُلَانِ لَسْتُ أُسَمِّيهِمَا، فَوَقَعَ فِي نَفْسِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ مَا شَاءَ اللَّهُ أَنْ يَقَعَ، فَحَدَّثَ، نَفْسَهُ فَأَنْزَلَ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ (وَلَا تَطْرُدِ الَّذِينَ يَدْعُونَ رَبَّهُمْ بِالْغَدَاةِ وَالْعَشِيِّ يُرِيدُونَ وَجْهَهُ-الأَنْعَام٥٢) رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

260- Ji Se'dê kurê Ebû Weqqas (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Em şeş mirov digel Pêxemberê Xwedê (s.) bûn. Vêca muşrikan gotin: Ya Muhemmed, tu van mirovan ji cem xwe derbixe der da ku li ser me curetê nekin (rabûn rûniştina digel wan li me xweş nayê). Se'd dibêje: Ez bûm û 'Ebdullah kurê Mes'ûd bû û mirovek ji êla Huzeyliyan bû û Bilal bû û du mirovên din jî bûn min navê ku ez navê wan bibêjim. Li ser vê yekê tişta Xwedê (c.c.) viyayî çêbe kete qelbê Pêxemberê Xwedê (s.). Vêca di dilê xwe de fikirî (ka çibike). Li ser vê yekê Xwedê te'ala ev ayet nazil kir. *"Ya Muhemmed! Tu nefsa xwe hepis bike digel wan kesên ku di sibeh û êvaran de gazî Rebbê xwe dikin û daxwaza razîbûna wî dikin. Çavên xwe ji wan venegerîne."*[4] *Muslim rîwayet kiriye.*

٢٦١- عَنْ أَبِي هُبَيْرَةَ عَائِذِ بْنِ عَمْرٍو الْمُزَنِيِّ -وَهُوَ مِنْ أَهْلِ بَيْعَةِ الرِّضْوَانِ ﷺ- أَنَّ أَبَا سُفْيَانَ أَتَى عَلَى سَلْمَانَ وَصُهَيْبٍ وَبِلَالٍ فِي نَفَرٍ فَقَالُوا: وَاللَّهِ مَا أَخَذَتْ سُيُوفُ اللَّهِ مِنْ

1 Bi hişkî digel wan neaxive.
2 Duha, 93/9-10.
3 Ma'ûn, 107/1-3.
4 En'am, 6/52

عَدُوِّ اللَّهِ مَأْخَذَهَا، فَقَالَ أَبُو بَكْرٍ ﷺ: أَتَقُولُونَ هَذَا لِشَيْخِ قُرَيْشٍ وَسَيِّدِهِمْ؟ فَأَتَى النَّبِيَّ ﷺ فَأَخْبَرَهُ، فَقَالَ: (يَا أَبَا بَكْرٍ لَعَلَّكَ أَغْضَبْتَهُمْ، لَئِنْ كُنْتَ أَغْضَبْتَهُمْ لَقَدْ أَغْضَبْتَ رَبَّكَ) فَأَتَاهُمْ أَبُو بَكْرٍ فَقَالَ: يَا إِخْوَتَاهُ أَغْضَبْتُكُمْ؟ قَالُوا: لَا، يَغْفِرُ اللَّهُ لَكَ يَا أَخِي. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

261- Ji Ebû Hubey re ‘A‘iz kurê ‘Emrê Muzenî –ew ji ehlê Bey‘etur-Ridwanê ye– (r.) hatiye rîwayetkirin. Bêguman Selman û Sûheyb û Bilal digel çend eshaban rûniştî bûn. Ebû Sufyan hate cem wan. Wan gotin: Şûrên Xwedê ji neyarên Xwedê re –ji Ebû Sufyan– kar û ‘emelê xwe pêk neaniye. Li ser vê yekê Ebû Bekir (r.) got: Hûn bo çi vê axaftinê ji bona rîspî û serwerê Qûreyşiyan dibêjin? Vêca Ebû Bekir (r.) hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û ew bi vê bûyerê hesand. Resûlê Xwedê got: “Ya Ebû Bekir dibe ku te ew cema‘eta eshaban ‘aciz kiribin. Heger te wan ‘aciz kiribe bêguman te Rebbê xwe ‘aciz kiriye.” Vêca Ebû Bekir hate cem wan û got: Gelî birayên min dibe ku hûn ji wê axaftina min ‘aciz bûbin. Gotin: Naxêr. Xwedê te bixefirîne ey birayê me. *Muslim rîwayet kiriye.*

٢٦٢- عَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَنَا وَكَافِلُ الْيَتِيمِ فِي الْجَنَّةِ هَكَذَا) وَأَشَارَ بِالسَّبَّابَةِ وَالْوُسْطَى وَفَرَّجَ بَيْنَهُمَا. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

262- Ji Sehlê kurê Se‘d (r.), gotiye: “Pêxemberê Xwedê (s.) got: Ez û ew kesê ku sêwiyan xwedî dike wekî van her du tiliyan e. Wisa bi tiliya şehadetê û bi tiliya navçarê îşaret kir û her du ji hev vekir.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

٢٦٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (كَافِلُ الْيَتِيمِ لَهُ أَوْ لِغَيْرِهِ أَنَا وَهُوَ كَهَاتَيْنِ فِي الْجَنَّةِ) وَأَشَارَ الرَّاوِي وَهُوَ مَالِكُ بن أَنَس بِالسَّبَّابَةِ وَالْوُسْطَى. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

263- Ji Ebû Hureyre (r.), gotiye: “Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Ew kesê ku li sêwiyên xwe û yan jî xeynî yên xwe xwedan derkeve ez û ew di cennetê de wekî van her du tiliyane.” Rawiyê hedîsê ku Malik kurê Enes e bi tiliya şehadetê û bi tiliya navîn îşaret kir. *Muslim rîwayet kiriye.*

٢٦٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَيْسَ الْمِسْكِينُ بِالَّذِي تَرُدُّهُ التَّمْرَةُ وَالتَّمْرَتَانِ، وَلَا اللُّقْمَةُ وَاللُّقْمَتَانِ، إِنَّمَا الْمِسْكِينُ الَّذِي يَتَعَفَّفُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

وَفِى رِوَايَةٍ فِى الصَّحِيحَيْنِ: (لَيْسَ الْمِسْكِينَ الَّذِى يَطُوفُ عَلَى النَّاسِ تَرُدُّهُ اللُّقْمَةُ وَاللُّقْمَتَانِ، وَالتَّمْرَةُ وَالتَّمْرَتَانِ، وَلكِنَّ الْمِسْكِينَ الَّذِي لَا يَجِدُ غِنًى يُغْنِيهِ، وَلَا يُفْطَنُ بِهِ فَيُتَصَدَّقُ عَلَيْهِ، وَلَا يَقُومُ فَيَسْأَلَ النَّاسَ).

264- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.), gotiye: "Pêxemberê Xwedê (s.) got: Miskîn ne ew e ku derî derî bigere bi xurmeyekê yan bi du xurmeyan yan jî bi parîkî an bi du pariyan vegere. Lêbelê miskîn ew e ku parsê nake û xwe dewlemend nîşanî xelkê dide." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetek dî ya Buxarî û Muslim de: "Miskîn ew kes nîne dora însanan bigere û bi pariyekî yan bi du pariyan, bi xurmeyekê yan jî bi du xurmeyan vegere. Bes miskîn ew e ku tişta îdara wî pê bibe li cem wî nîne û tu kes jî bi halê (bi feqîriya) wî nizane ku sedeqê li ser wî bide û ranabe ji tu kesî parsê nake."

٢٦٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (السَّاعِي عَلَى الأَرْمَلَةِ وَالْمِسْكِينِ كَالْمُجَاهِدِ فِي سَبِيلِ اللَّهِ) وَأَحْسِبُهُ قَالَ: (وَكَالْقَائِمِ الَّذِى لَا يَفْتُرُ وَكَالصَّائِمِ الَّذِى لَا يُفْطِرُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

265- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.), gotiye: "Pêxemberê Xwedê (s.) got: Ew kesê ku bi lezî şixulê jinebiyan û yê miskînan pêk tîne xêra wî wekî wî kesî ye yê ku di rêya Xwedê cîhadê dike." Rawî dibêje ez zen dikim ku Pêxemberê Xwedê (s.) weha jî got: "Hem wekî wî kesê bi şev bê sistayî îbadet dike û wekî wî mirovî bi dewamî rojî digre." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٦٦- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ: (قَالَ شَرُّ الطَّعَامِ طَعَامُ الْوَلِيمَةِ يُمْنَعُهَا مَنْ يَأْتِيهَا، وَيُدْعَى إِلَيْهَا مَنْ يَأْبَاهَا، وَمَنْ لَمْ يُجِبِ الدَّعْوَةَ فَقَدْ عَصَى اللَّهَ وَرَسُولَهُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

وَفِى رَوَايَةٍ فِي الصَّحِيحَيْنِ: عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ مِنْ قَوْلِهِ: (بِئْسَ الطَّعَامُ طَعَامُ الْوَلِيمَةِ، يُدْعَى إِلَيْهَا الأَغْنِيَاءُ وَيُتْرَكُ الْفُقَرَاءُ).

266- Dîsa Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.), gotiye: "Nebaştirînê xwarinan, xwarina wê dawetê ye ku yên dewlemend tên vexwendin û feqîr û miskîn nayêne gazîkirin. Kesê bê 'uzir bersiva xwedanê

dawetê nede (yanî neçe mala wî) bêguman wî bêemriya Xwedê û bêemriya Resûlê wî kiriye." *Muslim rîwayet kiriye.*

Di rîwayetek dî Muslim û Buxarî de: "Xerabtirînê xwarinan, xwarina wê dawetê ye ku ji bo wê dewlemend têne vexwendin, lêbelê feqîr û belengaz nayêne gazîkirin."

٢٦٧- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ عَالَ جَارِيَتَيْنِ حَتَّى تَبْلُغَا، جَاءَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ أَنَا وَهُوَ كَهَاتَيْنِ، وَضَمَّ أَصَابِعَهُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

267- Ji Enesê kurê Malik (r.), gotiye: "Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Heçî ku du keçikan hetanî bigihêjin xwedî bike, ewê di roja qiyametê de werin ku ez û ew wekî van her du tiliyane." Û Resûlê Xwedê tiliyên xwe gîhandin hevdu. *Muslim rîwayet kiriye.*

٢٦٨- عَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: دَخَلَتِ إِمْرَأَةٌ مَعَهَا إِبْنَتَانِ لَهَا تَسْأَلُ، فَلَمْ تَجِدْ عِنْدِي شَيْئًا غَيْرَ تَمْرَةٍ، فَأَعْطَيْتُهَا إِيَّاهَا، فَقَسَمَتْهَا بَيْنَ إِبْنَتَيْهَا وَلَمْ تَأْكُلْ مِنْهَا، ثُمَّ قَامَتْ فَخَرَجَتْ، فَدَخَلَ النَّبِيُّ ﷺ عَلَيْنَا فَأَخْبَرْتُهُ فَقَالَ: (مَنِ ابْتُلِيَ مِنْ هَذِهِ الْبَنَاتِ بِشَيْءٍ فَأَحْسَنَ إِلَيْهِنَّ كُنَّ لَهُ سِتْراً مِنَ النَّارِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

268- Ji 'Aîşe (r.), gotiye: Jinek hate cem min û digel wê du keçik hebûn. Tiştekî xwarinê xwest, lê ji xeynê libek xurme li cem min tunebû. Min ew jî da wê. Vêca wê jinikê ew liba xurmê di neqeba wan her du keçikan de parvekir. Ewê bi xwe tiştek jê nexwar. Paşê jî rabû derket. Pêxemberê Xwedê (s.) hate mal û min ew pê agahdar kir. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Heçî bi yek ji van keçikan bi tiştekî bê îmtihan kirin (yanî meşxûl bibe bi xwedankirina wan û bi terbiyekirina wan) vêca digel wan qenciyê bike, ew keçikana pêşberê êgir ji wî kesî re dibin perde." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٦٩- عَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: جَاءَتْنِي مِسْكِينَةٌ تَحْمِلُ إِبْنَتَيْنِ لَهَا فَأَطْعَمْتُهَا ثَلَاثَ تَمَرَاتٍ، فَأَعْطَتْ كُلَّ وَاحِدَةٍ مِنْهُمَا تَمْرَةً، وَرَفَعَتْ إِلَى فِيهَا تَمْرَةً لِتَأْكُلَهَا فَاسْتَطْعَمَتْهَا إِبْنَتَاهَا، فَشَقَّتِ التَّمْرَةَ الَّتِي كَانَتْ تُرِيدُ أَنْ تَأْكُلَهَا بَيْنَهُمَا، فَأَعْجَبَنِي شَأْنُهَا فَذَكَرْتُ الَّذِي صَنَعَتْ

لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: (إِنَّ اللَّهَ قَدْ أَوْجَبَ لَهَا بِهَا الْجَنَّةَ، أَوْ أَعْتَقَهَا بِهَا مِنَ النَّارِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

269- Dîsa ji 'Aîşe (r.), gotiye: Jinekê miskîn hate cem min du keçik hilgirtibûn. Vêca min sê lib xurme dane wê. Wê jî her keçekê libek dayê û libek jî rakir bi bal devê xwe ve da ku bixwe. Wan her du keçikan ew lib jî jê xwestin. Li ser vê yekê wê jinikê ew liba xurmeyê ku yê bixwara kire du qet û ji wan her du keçikan her yekî qetek dayê. Li ser vî karî ez bi halê wê 'ecêb mam. Min halê wê jinikê ji Pêxemberê Xwedê (s.) re got. Ewî jî got: "Xwedê te'ala ji wê jinikê re behişt wacib kir û yan jî ew ji êgir azad kir." *Muslim rîwayet kiriye.*

٢٧٠- عَنْ أَبِي شُرَيْحٍ خُوَيْلِدِ بْنِ عَمْرٍو ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (اللَّهُمَّ إِنِّي أُحَرِّجُ حَقَّ الضَّعِيفَيْنِ: الْيَتِيمِ وَالْمَرْأَةِ). رَوَاهُ النَّسَائِي بِإِسْنَادٍ جَيِّدٍ.

270- Ji Ebû Şureyh Xûweylidê kurê 'Emrê (r.), gotiye: "Pêxemberê Xwedê (s.) got: Ya Xwedayê min! Ez tehzîra mafê du ze'îfan, ku sêwî û jin in, dikim bi bal te ve (yanî ez gelek însanan ditirsînim û hişyar dikim ji tecawuzkirina huqûqê wan)." *Nesa'î bi senedek baş/ceyyîd rîwayet kiriye.*

٢٧١- عَنْ مُصْعَبِ بْنِ سَعْدِ بن أَبِي وقاص ﷺ قَالَ: رَأَى سَعْدٌ أَنَّ لَهُ فَضْلاً عَلَى مَنْ دُونَهُ، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (هَلْ تُنْصَرُونَ وَتُرْزَقُونَ إِلَّا بِضُعَفَائِكُمْ؟). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

رَوَاهُ الْبُخَارِي هكَذَا مُرْسَلاً، فَإِنَّ مُصْعَبَ بْنَ سَعْدٍ تَابِعِيٌّ، وَرَوَاهُ الْحَافِظُ أَبُو بَكْرٍ الْبَرْقَانِيُّ فِي صَحِيحِهِ مُتَّصِلاً عَنْ مُصْعَبٍ عَنْ أَبِيهِ ﷺ.

271- Ji Mus'eb kurê Se'dê kurê Ebû Weqqas (r.), gotiye: "Se'd zen dikir ku fedla wî li ser xeynê wî heye. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bêguman hûn bizanin serkeftina we û rizq û jiyina we sedem xatirê (dua û îbadet û îxlasa) ze'îf û belengazên we ne." *Buxarî rîwayet kiriye.*

Buxarî bi vî awayî hedîs, mursel[1] rîwayet kiriye. Lewra Mus'ebê kurê Se'd Tabi'iye. Ev hedîs hafiz Ebû Bekir Berqanî –ji Mus'eb, ewî jî ji bavê xwe– di sehîha xwe de muttesil[2] rîwayet kiriye.

٢٧٢- عَنْ أَبِي الدَّرْدَاءِ عُوَيْمِرٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (ابْغُونِي فِي الضُّعَفَاءَ فَإِنَّمَا تُرْزَقُونَ وَتُنْصَرُونَ بِضُعَفَائِكُمْ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ جَيِّدٍ.

1 **Mursel**: Hedîsa ku sehabe ji sened/zincîra hedîsê ketiye.

2 **Muttasil**: Hedîsa ku sened gihîştiye serekê livînê ku Resûlê Xwedê ye.

272- Ji Ebû Derdayê ‘Uweymîr (r.), gotiye: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, digot: “Hûn ze‘îf û belengazan bigerin û li wana miqate bin. Lewra bêguman hûn bizanin serkeftina we û rizq û jiyina we sedem xatirê (dua û îbadet û îxlasa) ze‘îf û belengazên we ne.” *Ebû Dawûd bi senedek baş/ceyyid rîwayet kiriye*

## بَابُ الْوَصِيَّة بِالنِّسَاءِ
## RABIWARDINA DIGEL JINA

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَعَاشِرُوهُنَّ بِالْمَعْرُوفِ﴾

“Hûn bi jinikên xwe re bi qencî derbas bikin.”[1]

﴿وَلَنْ تَسْتَطِيعُوا أَنْ تَعْدِلُوا بَيْنَ النِّسَاءِ وَلَوْ حَرَصْتُمْ فَلَا تَمِيلُوا كُلَّ الْمَيْلِ فَتَذَرُوهَا كَالْمُعَلَّقَةِ وَإِنْ تُصْلِحُوا وَتَتَّقُوا فَإِنَّ اللَّهَ كَانَ غَفُوراً رَحِيماً﴾

“Hûn çiqas pêdakevin jî dîsa hûn neşên ku ‘edaletê çêkin di neqeba jinikan de. Vêca hûn meyla xwe gişkî nedine bi bal yekê ve ku ya din jî wekî ku mu‘elleqeye[2] îhmal bikin. Heger hûn rêya dirust bigrin û ji Xwedê bitirsin, bêguman ew xefûr e û rehîm e.”[3]

٢٧٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (اسْتَوْصُوا بِالنِّسَاءِ خَيْرًا، فَإِنَّ الْمَرْأَةَ خُلِقَتْ مِنْ ضِلَعٍ، وَإِنَّ أَعْوَجَ شَيْءٍ فِي الضِّلَعِ أَعْلَاهُ، فَإِنْ ذَهَبْتَ تُقِيمُهُ كَسَرْتَهُ، وَإِنْ تَرَكْتَهُ لَمْ يَزَلْ أَعْوَجَ، فَاسْتَوْصُوا بِالنِّسَاءِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

وَفِي رِوَايَةٍ فِي الصَّحِيحَيْن:(الْمَرْأَةُ كَالضلع إِنْ أَقَمْتَهَا كَسرْتَهَا، وَ إِنِ إِسْتَمْتَعْتَ بِهَا إِسْتَمْتَعْتَ بِهَا وَ فِيهَا عَوَجُ)

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: (إِنَّ الْمَرْأَةَ خُلِقَتْ مِنْ ضلعٍ، لَنْ تَسْتَقِيمَ لَكَ عَلَى طَرِيقَة، فَإِنِ إِسْتَمْتَعْتَ بِهَا وَفِيهَا عَوَجُ، وَإِنْ ذَهَبْتَ تُقِيمُهَا كَسَرْتَهَا، وَكَسْرهَا طَلَاقُهَا)

1 Nîsa, 4/19.
2 **Mu‘elleqe**: Ew jina ku ne jinebî ye û ne jî mêrkirî ye.
3 Nîsa, 4/129.

273- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Di derbarê jinan de şîreta başiyê li hevdu bikin. Lewra bêguman jin ji parsiyê hatine afirandin û bêguman xwartirê parsiyê jora wê ye. Vêca eger tu bixwazî wê rast bikî tu dê bişkînî û eger tu bihêlî dê her wisa xwar bimîne. Vêca divê ku hûn derbarê jinan de şîretên baş li hevdu bikin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetek dî Buxarî û Muslim de: "Jin wekî parsiyê ye. Heger tu bixwazî wê rast bikî tu yê wê bişkênî. Heger tu bixwazî feydê jê bibînî tu dê feydê jê bibînî ku xwartî jî tê de heye."

Rîwayetek din ya Muslim de: "Bêguman jin ji hestiyê parsiyê hatiye afirandin. Bêguman li ser tu rêyê ji bona te rast nabe. Heger tu bixwazî feydê jê bibînî tu dê feydê jê bibînî ku xwartî jî tê de heye. Heger tu rabî wê rast bikî tu dê wê bişkînî û şikandina wê jî berdana wê ye."

٢٧٤- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ زَمْعَةَ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ النَّبِيَّ ﷺ يَخْطُب فَذَكَرَ النَّاقَةَ الَّذِي عَقَرَهَا فَقَالَ (إِذِ انْبَعَثَ أَشْقَاهَا) انْبَعَثَ بِهَا رَجُلٌ عَزِيزٌ عَارِمٌ مَنِيعٌ فِي رَهْطِهِ ثُمَّ ذَكَرَ النِّسَاءَ فَوَعَظَ فِيهِنَّ فَقَالَ: (يَعْمِدُ أَحَدُكُمْ فَيَجْلِدُ إِمْرَاتَهُ جَلْدَ الْعَبْدِ وَلَعَلَّهُ يُضَاجِعُهَا مِنْ آخِرِ يَوْمِهِ) ثُمَّ وَعَظَهُمْ فِي ضَحِكِهِمْ مِنَ الضَّرْطَةِ فَقَالَ: (لِمَ يَضْحَكُ أَحَدُكُمْ مِمَّا يَفْعَلُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

274- Ji 'Ebdullah kurê Zem'e (r.), bêguman wî ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst ku xutbe dixwend û di xutbê de behsa deveya Hz. Salih (s.) û wî mirovê ku ew deve kuşt kir û got: "Di nav qewmê Semûd de mirovekî bêbext ku bi quwet û nebaşiya xwe hatibû zanîn (ku navê wî Quzadê kurê Salif bû) zû rabû çû ew deve kuşt. Pişt re Pêxemberê Xwedê (s.) derbarê jinan de şîretê başiyê kir û got: "Yek ji we radibe ku jina xwe weka kolan têr bikute û bi guman e ku wê şevê jî digel wê razê. Pişt re jî derbarê kenîna wan bi berketin (tirê) we'zê wan kir û got: Çima? Ji bo tiştekî ku ji yekî we çêbûye hûn dikenin?" *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٧٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (لَا يَفْرَكْ مُؤْمِنٌ مُؤْمِنَةً، إِنْ كَرِهَ مِنْهَا خُلُقًا رَضِيَ مِنْهَا آخَرَ) أَوْ قَالَ: (غَيْرَهُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

275- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bila mirovek mu'min ji jineke mu'mine nexeyîde, eger xûyeke wê ku xweşa wî nayê hebe xûyeke wê ku xweşa wî jê re were heye." *Muslim rîwayet kiriye.*

٢٧٦- عَنْ عَمْرِو بْنِ الأَحْوَصِ الْجُشْمِي ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ النَّبِيَّ ﷺ فِي حَجَّةِ الْوَدَاعِ يَقُولُ - بَعْدَ أَنْ حَمِدَ اللَّهَ وَأَثْنَى عَلَيْهِ وَذَكَّرَ وَوَعَظَ - ثُمَّ قَالَ: (أَلَا وَاسْتَوْصُوا بِالنِّسَاءِ خَيْراً، فَإِنَّمَا هُنَّ عَوَانٌ عِنْدَكُمْ لَيْسَ تَمْلِكُونَ مِنْهُنَّ شَيْئًا غَيْرَ ذَلِكَ، إِلَّا أَنْ يَأْتِينَ بِفَاحِشَةٍ مُبَيِّنَةٍ، فَإِنْ فَعَلْنَ فَاهْجُرُوهُنَّ فِي الْمَضَاجِعِ وَاضْرِبُوهُنَّ ضَرْبًا غَيْرَ مُبَرِّحٍ، فَإِنْ أَطَعْنَكُمْ فَلَا تَبْغُوا عَلَيْهِنَّ سَبِيلاً، أَلَا إِنَّ لَكُمْ عَلَى نِسَائِكُمْ حَقّاً، وَلِنِسَائِكُمْ عَلَيْكُمْ حَقّاً، فَأَمَّا حَقُّكُمْ عَلَى نِسَائِكُمْ فَلَا يُوطِئْنَ فُرُشَكُمْ مَنْ تَكْرَهُونَ، وَلَا يَأْذَنَّ فِي بُيُوتِكُمْ لِمَنْ تَكْرَهُونَ، أَلَا وَحَقُّهُنَّ عَلَيْكُمْ أَنْ تُحْسِنُوا إِلَيْهِنَّ فِي كِسْوَتِهِنَّ وَطَعَامِهِنَّ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

276- Ji 'Emrê kurê Ehwes Cuşemî (r.), hatiye rîwayetkirin ku ewî di Heccul-Weda' yê de ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, piştî wî hemd û senayê Xwedê û zikr û we'z kir, digot: "Bala xwe bidin axaftina min. Derbarê jina de şîretê başiyê li hevdu bikin. Lewra bêguman ew wekî hêsîra ne li cem we, zêde tehekkuma we li ser wan tune ji xeynê îstimtayê (yanî razanê). Bes eger gunehek mezin eşkere bikin jî. Heger ew yek kirin (yanî gunehek mezin eşkere kirin) hûn jî wan di nivînê wan de biterikinin û lêdanek bê birîndarkirin li wan bidin. Heger wan guhdariya we kirin hûn di 'eleyhê wan de rêyek din negerin. Hûn dîsa bala xwe bidin min: Bêguman heqên we li ser jinên we hene û heqên wan jî li ser we hene. Heqên we yê li ser wan ev e ku nivînê we ji biyaniyan biparêzin û ew kesên ku hûn ji wan heznakin îzna hatina mala we nedin wan. Dîsa bala xwe bidin min: Heqê wan jî li ser we ew e ku di lixwekirinê û xwarin û vexwarinê de bi wan re qenciyê bikin." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye dereca wê hesen û sehîh e.*

٢٧٧- عَنْ مُعَاوِيَةَ بْنِ حَيْدَةَ ﷺ قَالَ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ مَا حَقُّ زَوْجَةِ أَحَدِنَا عَلَيْهِ؟ قَالَ: (أَنْ تُطْعِمَهَا إِذَا طَعِمْتَ، وَتَكْسُوَهَا إِذَا اكْتَسَيْتَ أَوِ اكْتَسَبْتَ وَلَا تَضْرِبِ الْوَجْهَ وَلَا تُقَبِّحْ، وَلَا تَهْجُرْ إِلَّا فِي الْبَيْتِ). حَدِيثٌ حَسَنٌ رَوَاهُ أَبُو دَاوُد.

277- Ji Mu'awiye kurê Heydete (r.), gotiye: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Heqê jinikê li ser yekî ji me çi ye? Got: "Wekî xwarin û vexwarina

xwe, xwarin û wexwarina wê jî bidiyê û wekî kinclixwekirina xwe, wê jî xwedankinc bikî û ji lêdana rûyê wê xwe biparêzî û peyvên bêrêz jê re nebêjî û ji xeynê di mal de terka wê nekî.” *Ebû Dawûd riwayet kiriye û gotiye dereca wê hesen e.*

٢٧٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (أَكْمَلُ الْمُؤْمِنِينَ إِيمَانًا أَحْسَنُهُمْ خُلُقًا، وَخِيَارُكُمْ خِيَارُكُمْ لِنِسَائِهِمْ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

278- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Mû'mintirê mu'minan ew e ku exlaqê wî baştir e. Herî başê we ew e ku ji bo jinên xwe baştir e.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye dereca wê hesen û sehîh e.*

٢٧٩- عَنْ إِيَاسِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ أَبِي ذُبَابٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَضْرِبُوا إِمَاءَ اللَّهِ) فَجَاءَ عُمَرُ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: ذَئِرْنَ النِّسَاءُ عَلَى أَزْوَاجِهِنَّ، فَرَخَّصَ فِي ضَرْبِهِنَّ، فَأَطَافَ بِآلِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ نِسَاءٌ كَثِيرٌ يَشْكُونَ أَزْوَاجَهُنَّ، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (لَقَدْ طَافَ بِآلِ مُحَمَّدٍ نِسَاءٌ كَثِيرٌ يَشْكُونَ أَزْوَاجَهُنَّ، لَيْسَ أُولَئِكَ بِخِيَارِكُمْ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

279- Ji Iyas kurê ‘Ebdullah kurê Ebû Zubab (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn li jinan nedin.” Vêca ‘Umer (r.) hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û jê re got: Jinan li ser mêran dest bi cûretê kirin. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) ji bo lêdana wan îzin da. Vêca gelek jin hatin cem pîrekên Resûlê Xwedê (s.) gazindê mêrên xwe kirin. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Gelek jin hatin ba jinên mala Muhemmed û gazindê mêrên xwe dikin. Mirovên wiha (ku li jinên xwe dixin) ne mirovên baş in.” *Ebû Dawûd rîwayet kiriye û gotiye dereca wê sehîh e.*

٢٨٠- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (الدُّنْيَا مَتَاعٌ، وَخَيْرُ مَتَاعِهَا الْمَرْأَةُ الصَّالِحَةُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

280- Ji ‘Ebdullah kurê ‘Emrê kurê ‘As (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Dunya meta‘ek e û qenctirînê wî meta‘ê dunyayî jî jina salihe ye.” *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ حَقِّ الزَّوْجِ عَلَى الْمَرْأَةِ
## HEQÊN MÊRAN LI SER JINAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿الرِّجَالُ قَوَّامُونَ عَلَى النِّسَاءِ بِمَا فَضَّلَ اللَّهُ بَعْضَهُمْ عَلَى بَعْضٍ وَبِمَا أَنْفَقُوا مِنْ أَمْوَالِهِمْ فَالصَّالِحَاتُ قَانِتَاتٌ حَافِظَاتٌ لِلْغَيْبِ بِمَا حَفِظَ اللَّهُ﴾

"Mêr, sedem ku Xwedê (c.c.) hinek ji wan tefdîl kiriye li ser hinekan û hem sedem ku ew ji malê xwe înfaq dikin, li ser jinan amir in. Vêca jinên salihe, yên ku bi dil îta'eta Xwedayê xwe dikin û çawa ku Xwedê emir kiriye bi wî awayî di xiyaba mêrê xwe de jî heqê wan diparêzin."[1]

٢٨١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا دَعَا الرَّجُلُ إِمْرَأَتَهُ إِلَى فِرَاشِهِ فَلَمْ تَأْتِهِ فَبَاتَ غَضْبَانَ عَلَيْهَا لَعَنَتْهَا الْمَلَائِكَةُ حَتَّى تُصْبِحَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُمَا: (إِذَ بَاتَتِ الْمَرْأَةُ هَاجِرَةً فِرَاشَ زَوْجِهَا لَعَنَتْهَا الْمَلَائِكَةُ حَتَّى تُصْبِحَ).

وَفِي رِوَايَةٍ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ مَا مِنْ رَجُلٍ يَدْعُو إِمْرَأَتَه إِلَى فِرَاشِهَا فَتَأْبَى عَلَيهِ إِلَّا كَانَ الَّذِي فِي السَّمَاء ساخِطاً عَلَيْهَا حَتَّى يَرْضَى عَنْهَا).

281- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Wextê mêr jina xwe gazîke ba nivîna xwe û ew jî neçe nivîna wî û li ser vê yekê mêrê wê jî jê bixeyd razê, melekên Xwedê lanetê li wê jinê dibarînin heya sibê." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

Di rîwayetek din de: "Wextê jinê (bê 'uzir) terka nivîna mêrê xwe kir û raza, heya sibê melekên Xwedê lanetê lê dibarînin."

Di rîwayetek din de jî: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ez bi wî Xwedayê ku nefsa min bi qudreta wî ye sond dixwim ku her mêrê ku gazî jina xwe bike ba nivîna xwe ve û ew jin jî daxwaza mêrê xwe neyîne cih ewên di asîmanan de (yanî milyaket û yan jî Xweda celle celaluhu) ji wê dixeyidin heya mêrê wê ji wê razî be."

1 Nîsa, 4/34

٢٨٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا يَحِلُّ لِلْمَرْأَةِ أَنْ تَصُومَ وَزَوْجُهَا شَاهِدٌ إِلَّا بِإِذْنِهِ وَلَا تَأْذَنَ فِي بَيْتِهِ إِلَّا بِإِذْنِهِ) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم، وَهَذَا لَفْظُ الْبُخَارِي.

282- Ji Ebû Hureyre (r.), hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ne dirust e ji jinê re ku mêrê wê li mal be û bê îzna wî rojî (ya nafile) bigre. Dîsa ne dirust e ji jinê re ku bê destûra mêrê xwe destûra yekî bide ku were mala wî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine. Ev lefzê Buxarî ye.*

٢٨٣- عَنِ ابْنَ عُمَرَ ﷺ يَقُولُ عَنِ النَّبِيُّ ﷺ قَالَ: (كُلُّكُمْ رَاعٍ وَكُلُّكُمْ مَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، وَالأَمِيرُ رَاعٍ، وَالرَّجُلُ رَاعٍ عَلَى أَهْلِ بَيْتِهِ، وَالْمَرْأَةُ رَاعِيَةٌ عَلَى بَيْتِ زَوْجِهَا وَوَلَدِهِ، فَكُلُّكُمْ رَاعٍ وَكُلُّكُمْ مَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

283- Ji Îbnu 'Umer (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn gişk şivan in û hûn gişk jî ji şivaniya xwe berpirsiyar in. Mîr şivan e û mêr şivanê malbata xwe ye û jinik jî şivan e li ser mala mêrê xwe û li ser zarokê wî. Hûn gişk şivan in û hûn gişk jî ji şivaniya xwe perpirsiyar in." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٨٤- عَنْ أَبِى عَلِيٍّ طَلْقِ بْنِ عَلِيٍّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (إِذَا دَعَا الرَّجُلُ زَوْجَتَهُ لِحاجَتِهِ فَلْتَأْتِهِ وَإِنْ كَانَتْ عَلَى التَّنُّورِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي وَالنَّسَائِي.

284- Ji Ebû 'Elî Telqê kurê 'Elî (r.), got: Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wexta mêr gazî jina xwe kir ji bona hewceya xwe, bila jina wî here cem çendan ew li ser tenûrê be." *Tirmizî û Nesaî rîwayet kirine.*

٢٨٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَوْ كُنْتُ آمِراً أَحَداً أَنْ يَسْجُدَ لأَحَدٍ لأَمَرْتُ أَنْ تَسْجُدَ لِزَوْجِهَا). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيح.

285- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku "Heger min emrê yekî bikira ji bona ku ji yekî re secdê bike minê emrê jinê bikira ku ji bona mêrê xwe secdê bike." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye dereca wê hesen û sehîh e.*

٢٨٦- عَنْ أُمِّ سَلَمَةَ ﷺ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (أَيُّمَا إِمْرَأَةٍ مَاتَتْ وَزَوْجُهَا عَنْهَا رَاضٍ دَخَلَتِ الْجَنَّةَ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيح.

286- Ji Ummu Seleme (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Her kîjan jina ku bimire û mêrê wê ji wê razî be ew jinik dê here cennetê.” *Tirmizi rîwayet kiriye û gotiye dereca wê hesen e.*

٢٨٧- عَنْ مُعَاذِ بْنِ جَبَلٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تُؤْذِي إِمْرَأَةٌ زَوْجَهَا فِي الدُّنْيَا إِلَّا قَالَتْ زَوْجَتُهُ مِنَ الْحُورِ الْعِينِ: لَا تُؤْذِيهِ، قَاتَلَكِ اللَّهُ، فَإِنَّمَا هُوَ عِنْدَكِ دَخِيلٌ أَوْشَكَ أَنْ يُفَارِقَكِ إِلَيْنَا). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

287- Ji Mu‘azê kurê Cebel (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wexta di dunyayê de jinik tadayê li mêrê xwe dike jinika wî ya ku ji horiyan e dibêje: Xwedê te bikuje; tadayê wî neke. Ew li cem te di dunyayê de mêvan e û nêzîk e ew ji te veqete û were cem me.” *Tirmizi rîwayet kiriye û gotiye dereca wê hesen e.*

٢٨٨- عَنْ أُسَامَةَ بْنِ زَيْدٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَا تَرَكْتُ بَعْدِي فِتْنَةً هِيَ أَضَرُّ عَلَى الرِّجَالِ مِنَ النِّسَاءِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

288- Ji Usameyê kurê Zeyd (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Min li dû xwe ji mêran re fitneyek ku ji jinan zerartir be nehiştiye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ النَّفَقَةِ عَلَى الْعِيَالِ
## XWEDÎKIRINA ZAR Û ZÊÇAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَعَلَى الْمَوْلُودِ لَهُ رِزْقُهُنَّ وَكِسْوَتُهُنَّ بِالْمَعْرُوفِ﴾

“Xwarin û vexwarina dayikên şîrdidin li ser bav bi anegorî orfê ye.”[1]

﴿لِيُنْفِقْ ذُو سَعَةٍ مِنْ سَعَتِهِ وَمَنْ قُدِرَ عَلَيْهِ رِزْقُهُ فَلْيُنْفِقْ مِمَّا آتَاهُ اللَّهُ لَا يُكَلِّفُ اللَّهُ نَفْساً إِلَّا مَا آتَاهَا﴾

“Kesê ku destê wî fireh e bila qasî hebûna xwe înfaq bike. Kesê ku desteng e bila ew jî, ji dayina Xwedê gor quweta xwe înfaq bike. Xwedê te‘ala

1 Beqere, 2/233.

tu kesî berpirsiyar nagire ji zêdetirê wan îmkanên ku daye."[1]

﴿وَمَا أَنْفَقْتُمْ مِنْ شَيْءٍ فَهُوَ يُخْلِفُهُ﴾

"Hûn her çi înfaq bikin Xwedê şûna wî tiştek dîtir dide."[2]

٢٨٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (دِينَار أَنفقته فِي سبيل الله، وَدِينَارٌ أَنْفَقْتَهُ فِي رَقَبَةٍ، وَدِينَارٌ تَصَدَّقْتَ بِهِ عَلَى مِسْكِينٍ، وَدِينَارٌ أَنْفَقْتَهُ عَلَى أَهْلِكَ، أَعْظَمُهَا أَجْرًا الَّذِي أَنْفَقْتَهُ عَلَى أَهْلِكَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

289- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Dînarek ku te di rêya Xwedê de înfaq kiriye û dînarek ku te di azadkirina kolekî de înfaq kiriye û dînarek ku te sedeqe daye desttengekî û dînarek jî te înfaq kiriye li ser 'iyalê xwe; ew dînarekê ku te înfaq kiriye li ser 'iyalê xwe xêrtir e ji wanê din gişkan." *Muslim rîwayet kiriye.*

٢٩٠- عَنْ أَبِي عبد الله ويقال أَبُو عبد الرحمن ثَوْبَانَ بن بُجْدُد مَوْلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَفْضَلُ دِينَارٍ يُنْفِقُهُ الرَّجُلُ دِينَارٌ يُنْفِقُهُ عَلَى عِيَالِهِ، وَدِينَارٌ يُنْفِقُهُ الرَّجُلُ عَلَى دَابَّتِهِ فِي سَبِيلِ اللَّهِ، وَدِينَارٌ يُنْفِقُهُ عَلَى أَصْحَابِهِ فِي سَبِيلِ اللَّهِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

290- Ji Ebû 'Ebdullah û tê gotin Ebû 'Ebdurrehman jî, Sewban kurê Bucdud azadbûyê Pêxember (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Herî baş ê dînarekê ku mirov înfaq dike ew dînarê ku li 'iyalê xwe înfaq dike û ew dînarê ku di rêya Xwedê de li heywana xwe xerc dike û yek jî ew dînarê ku di rêya Xwedê de ji hevalên xwe re înfaq dike." *Muslim riwayet kiriye.*

٢٩١- عَنْ أُمِّ سَلَمَةَ ﷺ قَالَتْ: قُلْتُ يَا رَسُولَ اللَّهِ، هَلْ لِي أَجْرٌ فِي بَنِي أَبِي سَلَمَةَ أَنْ أُنْفِقُ عَلَيْهِمْ وَلَسْتُ بِتَارِكَتِهِمْ هَكَذَا وَهَكَذَا إِنَّمَا هُمْ بَنِيَّ؟ فَقَالَ: (نَعَمْ لَكِ أَجْرُ مَا أَنْفَقْتِ عَلَيْهِمْ) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

291- Ji Ummu Seleme (r.), got: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê (s.)! Ji

1 Telaq, 63/7.
2 Sebe, 34/39.

bo min di zarokê Ebû Seleme de xêr heye ku ez wan xwedî bikim? Ya rastî ez wan beredayî bernadim ku ew bi vî alî û wî alî ve herin. Lewra bêguman ew zarokê min in. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Belê xêr tişta ku te li wan xerckiriye ji te re heye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٩٢- عَنْ سَعْدِ بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ ﷺ فِي حَدِيثِهِ الطَّوِيلِ الَّذِى قَدَّمْنَاهُ فِى أَوَّلِ الْكِتَابِ فِى بَابِ النِّيَّةِ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ لَهُ: (إِنَّكَ لَنْ تُنْفِقَ نَفَقَةً تَبْتَغِي بِهَا وَجْهَ اللَّهِ إِلَّا أُجِرْتَ بِهَا حَتَّى مَا تَجْعَلُ فِي فَمِ إِمْرَأَتِكَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

292- Ji Se'dê kurê Ebû Weqqas di hedîsa wî ya dirêja ku me serê kitêbê de, di behsa niyetê de pêşkeş kir, bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) jê re got: "Bêguman çi sedeqa ku tu ji bo Xwedê te'ala bidî tê xêra wê bistînî, heta ew hopê ku tu bixî devê pîreka xwe de jî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٩٣- عَنْ أَبِى مَسْعُودِ الْبَدْرِىِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِذَا أَنْفَقَ الرَّجُلُ عَلَى أَهْلِهِ نَفَقَةً يَحْتَسِبُهَا فَهِو لَهُ صَدَقَةٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

293- Ji Ebû Mes'ûdê Bedrî (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Dema mirov jî riza Xwedê hêvîdar be, înfaqê li 'iyalê xwe dike ew înfaq ji bo wî mirovî dibe sedeqe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٩٤- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِ بْنِ الْعَاصِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (كَفَى بِالْمَرْءِ إِثْمًا أَنْ يُضَيِّعَ مَنْ يَقُوتُ). حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيح رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَغَيْرُهُ.

وَرَوَاهُ مُسْلِمْ فِي صَحِيحَه بِمَعْنَاهُ قَالَ: (كَفَى بِالْمَرْءِ إِثْمًا أَنْ يَحْبِسَ عَمَّنْ يَمْلِكُ قُوتَهُ)

294- Ji 'Ebdullah kurê 'Emrê kurê 'As (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Besî mirov e ku di aliyê guneh de nedana nefeqa wî kesî ku nefeqa wî li ser wî mirovî wacib e."

Dereca wê hesen û sehîh e. Ebû Dawûd û xeynê wî yên din jî rîwayet kirine.

Muslim di sehîha xwe de bi vê maneyê rîwayet kiriye ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Besî mirov e di aliyê guneh de qutkirina nefeqa wî kesî ku nefeqa wî li ser wî mirovî wacib e."

  

٢٩٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ: (قَالَ مَا مِنْ يَوْمٍ يُصْبِحُ الْعِبَدُ فِيهِ إِلَّا مَلَكَانِ يَنْزِلَانِ فَيَقُولُ أَحَدُهُمَا: اللَّهُمَّ أَعْطِ مُنْفِقًا خَلَفاً، وَيَقُولُ الآخَرُ: اللَّهُمَّ أَعْطِ مُمْسِكاً تَلَفاً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

295- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Tu roj tune ku 'ebd tê de xwedansibe dibe mutleqa du milyaket têne xwarê, yek ji wan dibêje: Ya Xwedayê min! Yê ku înfaqê dike tu hemberî wê bidêyî. Milyaketê din jî dibêje: Xwedayo! Tu telefê bidî yê ku temahkar e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٩٦- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (الْيَدُ الْعُلْيَا خَيْرٌ مِنَ الْيَدِ السُّفْلَى، وَابْدَأْ بِمَنْ تَعُولُ، وَخَيْرُ الصَّدَقَةِ مَا كَانَ عَنْ ظَهْرِ غِنىً، وَمَنْ يَسْتَعْفِفْ يُعِفَّهُ اللَّهُ، وَمَنْ يَسْتَغْنِ يُغْنِهِ اللَّهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

296- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Destê bilind (ê dayinê) xêrtir e ji destê nizim (ê wergirtinê). Ji ewê ku nefeqa wî li ser te wacib e dest bi înfaqê bike. Xêrtirînê sedeqeyan ew e ku bi dewlemendî be. Ew kesê ku xwe ji parskirinê biparêze Xwedê jî yê wî biparêze û ew kesê ku daxwaza qena'etê bike, Xwedê dê ewî dewlemend bike. (Yanî dê ewî xwedanqenaet bike)." *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ الإِنْفَاقِ مِمَّا يُحِبُّ وَمِنَ الْجَيِّدِ

## ÎNFAQA TIŞTÊN RIND Û HEZJÊKER

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿لَنْ تَنَالُوا الْبِرَّ حَتَّى تُنْفِقُوا مِمَّا تُحِبُّونَ﴾

"Heta ku hûn ji wî tiştê ku hûn jê hez dikin înfaq nekin hûn nagihêjên xêrê (an cennetê)."[1]

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا أَنْفِقُوا مِنْ طَيِّبَاتِ مَا كَسَبْتُمْ وَمِمَّا أَخْرَجْنَا لَكُمْ مِنَ الأَرْضِ وَلَا تَيَمَّمُوا الْخَبِيثَ مِنْهُ تُنْفِقُونَ﴾

"Gelî ewên bawerî anîne! Hûn înfaqê bikin ji malê xwe yê helalê we qezenc kiriye û him ji wî tiştê ku me ji erdê ji we re derxistiye. Hûn qesd û

1 Alî 'Îmran, 3/92.

meyla xwe nedin bal malê kêmqîmet ve da ku hûn ji wî malî înfaqê bikin."[1]

٢٩٧- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ قَالَ: كَانَ أَبُو طَلْحَةَ ﷺ أَكْثَرَ الأَنْصَارِ بِالْمَدِينَةِ مَالاً مِنْ نَخْلٍ وَكَانَ أَحَبُّ أَمْوَالِهِ إِلَيْهِ بَيْرُحَاءَ وَكَانَتْ مُسْتَقْبِلَةَ الْمَسْجِدِ، وَكَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَدْخُلُهَا وَيَشْرَبُ مِنْ مَاءٍ فِيهَا طَيِّبٍ، قَالَ أَنَسٌ: فَلَمَّا أُنْزِلَتْ هَذِهِ الآيَةُ (لَنْ تَنَالُوا الْبِرَّ حَتَّى تُنْفِقُوا مِمَّا تُحِبُّونَ) جَاءَ أَبُو طَلْحَةَ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، إِنَّ اللَّهَ تَبَارَكَ وَتَعَالَى يَقُولُ: (لَنْ تَنَالُوا الْبِرَّ حَتَّى تُنْفِقُوا مِمَّا تُحِبُّونَ) وَإِنَّ أَحَبَّ أَمْوَالِي إِلَيَّ بَيْرُحَاءَ وَإِنَّهَا صَدَقَةٌ لِلَّهِ أَرْجُو بِرَّهَا وَذُخْرَهَا عِنْدَ اللَّهِ، فَضَعْهَا يَا رَسُولَ اللَّهِ حَيْثُ أَرَاكَ اللَّهُ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (بَخٍ، ذَلِكَ مَالٌ رَابِحٌ، وَقَدْ سَمِعْتُ مَا قُلْتَ، وَإِنِّي أَرَى أَنْ تَجْعَلَهَا فِي الأَقْرَبِينَ) فَقَالَ أَبُو طَلْحَةَ: أَفْعَلُ يَا رَسُولَ اللَّهِ فَقَسَمَهَا، أَبُو طَلْحَةَ فِي أَقَارِبِهِ وَبَنِي عَمِّهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

297- Ji Enesê kurê Malik (r.), got: Ebû Telhe (r.) di Medînê de ji aliyê xurmeyan ve dewlemendtirê Ensaran bû û ji hemû malê wî jî yê ku pirtir jê hez dikir "Beyreha" bû. Ew jî diket aliyê qibleya mizgeftê. Pêxemberê Xwedê (s.) carna diçû nav wî bostanê xurmeyan û ji ava wî ya xweş ku tê de bû vedixwar. Enes got: Wextê ku ayeta; "heta ku hûn ji wî tiştê ku hûn jê hez dikin înfaq nekin hûn nagihêjin xêrê (yan cennetê)" nazil bû, Ebû Telhe hate ba Pêxemberê Xwedê (s.) û jê re got: Ey Resûlê Xwedê! Bêguman Xweda te'ala: "Heta ku hûn ji wî tiştê ku hûn jê hez dikin înfaq nekin hûn nagihêjin xêrê (yan cennetê)" dibêje û bêguman li ba min malê minî hêrî zêde hezkirî jî Beyreha ye. Vêca ew ji bo wechê Xwedê sedeqe ye. Ez hêvîdar im ku ew li ba Xwedê te'ala bibe xêr û zexîra min. Vêca Ya Resûlê Xwedê, tu wê dayne wî cihê ku Xwedê nîşanî te daye (yanî di wî cihî de serf bike ku Xwedê jê hezkirî ye). Li ser vê gotinê Resûlê Ekrem (s.) got: "Ev çiqas tiştekî baş û kardar e. Min gotina te bihîst û ez birê dibînim ku tu Beyrehayê li eqrebayên xwe parve bikî." Ebû Telhe got: Ez wilo bikim ya Resûlê Xwedê. Vêca Ebû Telhe ew rezê xurmeyan li eqrebayên xwe parve kir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 Beqere, 2/267.

## بَابُ وُجُوبِ أَمْرِ أَهْلِهِ وَأَوْلَادِهِ

## EMIRKIRINA MALBATÊ BI TAETA XWEDÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَأْمُرْ أَهْلَكَ بِالصَّلَاةِ وَاصْطَبِرْ عَلَيْهَا﴾

"Emrê zar û zêçên xwe bike bi nimêjê. Û sebir bike li ser nimêjê."[1]

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا قُوا أَنْفُسَكُمْ وَأَهْلِيكُمْ نَاراً﴾

"Gelî ewên we bawerî anîne! Hûn xwe û zar û zêçên xwe ji wî agirî biparêzin ku şewata wî însan û kuç in."[2]

٢٩٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: أَخَذَ الْحَسَنُ بْنُ عَلِيٍّ ﷺ تَمْرَةً مِنْ تَمْرِ الصَّدَقَةِ فَجَعَلَهَا فِي فِيهِ، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (كَخْ كَخْ اِرْمِ بِهَا، أَمَا عَمِلْتُ أَنَّا لَا نَأْكُلُ الصَّدَقَةَ).

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ (أَنَّا لَا تَحِلُّ لَنَا الصَّدَقَةُ).

298- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Hesenê kurê 'Elî (r.) xurmeyek ji xurmeyê zikatê hilgirt û avête devê xwe. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Kix, kix! Wê bavêje. Ma tu nizanî ku em sedeqê (zikatê) naxwin?"

Di rîwayetek din de wiha ye: "Bêguman zikat ji bo me helal nîne." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٢٩٩- عَنْ أَبِي حَفْصٍ عُمَرَ بْنَ أَبِي سَلَمَةَ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عِبْدِ الأَسَدِ ﷺ رَبِيبِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: كُنْتُ غُلَامًا فِي حَجْرِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَكَانَتْ يَدِي تَطِيشُ فِي الصَّحْفَةِ فَقَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (يَا غُلَامُ سَمِّ اللَّهَ، وَكُلْ بِيَمِينِكَ، وَكُلْ مِمَّا يَلِيكَ) فَمَا زَالَتْ تِلْكَ طِعْمَتِي بَعْدُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

299- Ji Ebû Hefs 'Umer Kurê Seleme 'Ebdullah kurê 'Ebdulesed (r.)

1 Taha, 20/132.
2 Tehrîm, 66/6.

Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ez zarok bûm di parêzgeriya Pêxemberê Xwedê de bûm. Destê min her terefê firaxê de digeriya. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.), ji min re got: 'Kurik! Tu navê Xwedê bîne û tu bi destê xwe yê rastê bixwe û ji aliyê xwe ve bixwe.' Piştî vê şîreta Resûlê Xwedê min bi wî awayî xwarina xwe berdewam kir." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٠٠- عَنِ ابْنَ عُمَرَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (كُلُّكُمْ رَاعٍ وَكُلُّكُم مَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، الإِمَامُ رَاعٍ وَمَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، وَالرَّجُلُ رَاعٍ فِي أَهْلِهِ وَمَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، وَالْمَرْأَةُ رَاعِيَةٌ فِي بَيْتِ زَوْجِهَا وَمَسْئُولَةٌ عَنْ رَعِيَّتِهَا، وَالْخَادِمُ رَاعٍ فِي مَالِ سَيِّدِهِ وَمَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، فَكُلُّكُمْ رَاعٍ وَمَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

300- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst û digot: "Hûn gişk şivan in û hûn gişk jî ji şivaniya xwe berpirsiyar in. Mîr şivan e û ji şivaniya xwe berpirsiyar e. Mêr şivanê malbata xwe ye û ji şivaniya xwe berpirsiyar e. Jinik jî şivane di mala mêrê xwe de û ji şivaniya xwe berpirsiyar e. Xulam jî di malê axayê xwe de şivan e û ji şivaniya xwe berpirsiyar e. Bi kurtî hûn gişk şivan in û hûn gişk jî ji şivaniya xwe perpirsiyar in." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٠١- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ ﷺ، قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مُرُوا أَوْلَادَكُمْ بِالصَّلَاةِ وَهُمْ أَبْنَاءُ سَبْعِ سِنِينَ، وَاضْرِبُوهُمْ عَلَيْهَا وَهُمْ أَبْنَاءُ عَشْرٍ، وَفَرِّقُوا بَيْنَهُمْ فِي الْمَضَاجِعِ). حَدِيثٌ حَسَنٌ. رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

301- Ji 'Emrê kurê Şu'eyb ji bavê xwe ji bapîrê xwe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn kirina nimêjê di heft (7) saliya wan de emrê zarokên xwe bikin. Wextê ew bûn deh (10) salî ji bo nimêjê li wan xin û ciyê wanê razanê jî ji hev biqetînin." *Hedîs hesen e. Ebû Dawûd bi senedek hesen rîwayet kiriye.*

٣٠٢- عَنْ أَبِي ثُرَيَّةَ سَبْرَةَ بْنِ مَعْبَدِ الْجُهَنِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (عَلِّمُوا الصَّبِيَّ الصَّلَاةَ لِسَبْعِ سِنِينَ، وَاضْرِبُوهُ عَلَيْهَا ابْنَ عَشْرِ سِنِينَ). حَدِيثٌ حَسَنٌ. رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي.

  

وَلَفْظُ أَبِي دَاوودَ:(مُرُوا الصَّبِي بِالصَّلاةِ إِذَا بَلَغَ سَبْعَ سِنِينَ).

302- Ji Ebû Sureyye Sebre kurê Me'bedê Cuhenî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Zarok wexta bû heft (7) salî nimêjkirinê hîn bikinê. Wextê ew bû deh (10) salî ji bo (terka) nimêjê lêxin." *Hedîs hesen e. Ebû Dawûd û Tirmizî riwayet kirine. Tirmizî got: Hedîs hesen e.*

Lefzê Ebû Dawûd wiha ye: "Zarok wexta bû heftsalî, emrê wî bikin bi kirina nimêjê."

## بَابُ حَقِّ الْجَارِ وَالْوَصِيَّةُ بِهِ
## HEQÊ CÎRAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَاعْبُدُوا اللَّهَ وَلَا تُشْرِكُوا بِهِ شَيْئًا وَبِالْوَالِدَيْنِ إِحْسَانًا وَبِذِى الْقُرْبَى وَالْيَتَامَى وَالْمَسَاكِينِ وَالْجَارِ ذِى الْقُرْبَى وَالْجَارِ الْجُنُبِ وَالصَّاحِبِ بِالْجَنْبِ وَابْنِ السَّبِيلِ وَمَا مَلَكَتْ أَيْمَانُكُمْ﴾

"Hûn îbadetê Xwedê bikin û qet şirîkan jê re çênekin. Qenciyê digel dê û bav û eqrebayên xwe bikin. Hem qenciyê digel sêwiyan, belengazan, cîranên xwe yên nêzîk (çi cîhetê malê ve, çi cîhetê nesebê ve û çi jî cîhetê din ve be.) û yên dûr, hevalên cem xwe, rêwî (yên ku mêvan in) û hem ewanê ku bindestên we de (kole û cariye) ne."[1]

٣٠٣- عَنِ ابْنِ عُمَرَ وَعَائِشَةَ ﵄ قَالَا: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (مَا زَالَ جِبْرِيلُ يُوصِينِي بِالْجَارِ حَتَّى ظَنَنْتُ أَنَّهُ سَيُوَرِّثُهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

303- Ji Îbnu 'Umer û ji 'Aîşe (r.), gotin: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Cebraîl hind qeder şîreta cîranan li min kir, min got qey wê cîran bibe warisê cîranê xwe." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٣٠٤- عَنْ أَبِي ذَرٍّ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (يَا أَبَا ذَرٍّ إِذَا طَبَخْتَ مَرَقَةً فَأَكْثِرْ مَاءَهَا وَتَعَاهَدْ جِيرَانَكَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1 Nîsa, 4/36.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ عَنْ أَبِي ذَرٍّ قَالَ: إِنَّ خَلِيلِي ﷺ: (أَوْصَانِي إِذَا طَبَخْتَ مَرَقًا فَأَكْثِرْ مَاءَهَا، ثُمَّ انْظُرْ أَهْلَ بَيْتٍ مِنْ جِيرَانِكَ فَأَصِبْهُمْ مِنْهَا بِمَعْرُوفٍ)

304- Ji Ebû Zerr (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Ya Ebû Zerr! Wextê te şorbe çêkir ava wê zehf bike û cîranên xwe jî bide ber çavê xwe (yanî ji wan re jî îkram bike).” *Muslim rîwayet kiriye.*

Di rîwayetek din a Muslim de ji Ebû Zerr wiha ye: Bêguman dostê min Muhemmed (s.) wiha şîret li min kir: “Wextê te şorbe çêkir ava wê zehf bike, paşê ehlê malek ji cîranên xwe bide ber çavê xwe û ewê muhtac be ewê bêpar nehêle.”

٣٠٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (وَاللَّهِ لَا يُؤْمِنُ، وَاللَّهِ لَا يُؤْمِنُ، وَاللَّهِ لَا يُؤْمِنُ) قِيلَ: وَمَنْ يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: (الَّذِي لَا يَأْمَنُ جَارُهُ بَوَائِقَهُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: (لَا يَدْخُلُ الْجَنَّةَ مَنْ لَا يَأْمَنُ جَارُهُ بَوَائِقَهُ)

305- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wellahî ne mu’min e, wellahî ne mu’min e, wellahî ne mu’min e.” Hate gotin kî ne mu’min e ya Resûlê Xwedê? Got: “Ew kesê ku cîranê wî ji nebaşîyên wî ne emin e.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayeteka Muslim de wiha ye: “Ew kesê ku cîranê wî ji şerê wî emîn nîne ew naçe cennetê.”

٣٠٦- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (يَا نِسَاءَ الْمُسْلِمَاتِ، لَا تَحْقِرَنَّ جَارَةٌ لِجَارَتِهَا وَلَوْ فِرْسِنَ شَاةٍ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

306- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Gelî jinên misilman! Bila tu cîran cîrana xwe (bi tişta ku hediye kiriye) kêm neke, çendan bi pêkî pez jî be.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٠٧- وَعَنْهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا يَمْنَعْ جَارٌ جَارَهُ أَنْ يَغْرِزَ خَشَبَةً فِي جِدَارِهِ) ثُمَّ يَقُولُ أَبُو هُرَيْرَةَ: مَا لِي أَرَاكُمْ عَنْهَا مُعْرِضِينَ، وَاللَّهِ لَأَرْمِيَنَّ بِهَا بَيْنَ أَكْتَافِكُمْ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

307- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Bira tu cîran men‘a cîranê xwe neke ku singekî di dîwarê wî

de bikute." Paşê Ebû Hureyre got: Bo çi ez we dibînim ku hûn vê sunnetê bi cih naynin. Wellahî ezê vê sunnetê nav we de bi cih bînim. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٠٨- وَعَنْهُ أَنَّ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ قال: (مَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ ٱلآخِرِ فَلَا يُؤْذِ جَارَهُ، وَمَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ ٱلآخِرِ فَلْيُكْرِمْ ضَيْفَهُ، وَمَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ ٱلآخِرِ فَلْيَقُلْ خَيْراً أَوْ لِيَسْكُتْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

308- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.), hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ew kesê ku bawerî bi Xwedê û bi roja axretê aniye bila ew ezyetê li cîranê xwe neke. Ew kesê ku bawerî bi Xwedê û bi roja axretê aniye bila qedrê mêvanê xwe bigire. Ew kesê ku bawerî bi Xwedê û bi roja axretê aniye bila yan a xêr bibêje û yan jî bila xwe kerr bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٠٩- عَنْ أَبِى شُرَيْحٍ الْخُزَاعِيِّ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (مَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ ٱلآخِرِ فَلْيُحْسِنْ إِلَى جَارِهِ، وَمَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ ٱلآخِرِ فَلْيُكْرِمْ ضَيْفَهُ، وَمَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ ٱلآخِرِ فَلْيَقُلْ خَيْراً أَوْ لِيَسْكُتْ). رَوَاهُ مُسْلِمْ بِهَذَا اللَّفْظِ، وَرَوَى الْبُخَارِي بَعْضَهُ.

309- Ji Ebû Şureyh el-Xuza'î (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ew kesê ku bawerî bi Xwedê û bi roja axretê aniye bila ew qenciyê li cîranê xwe bike. Ew kesê ku bawerî bi Xwedê û bi roja axretê aniye bila qedrê mêvanê xwe bigire. Ew kesê ku bawerî bi Xwedê û bi roja axretê aniye bila yan a xêr bibêje an jî bila xwe kerr bike." *Muslim rîwayet kiriye. Muslim bi vî lefzî rîwayet kiriye. Buxarî hinek jê rîwayet kiriye.*

٣١٠- عَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: قُلْتُ يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنَّ لِي جَارَيْنِ، فَإِلَى أَيِّهِمَا أُهْدِى؟ قَالَ: (إِلَى أَقْرَبِهِمَا مِنْكِ بَاباً). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

310- Ji 'Aîşe (r.), got: Min got: Ey Pêxemberê Xwedê! Bêguman du (2) cîranên min hene. Ez qenciyê digel kîjani ji wan bikim. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Digel wî yê ku deriyê wî nêzîktirê te ye." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٣١١- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (خَيْرُ الأَصْحَابِ عِنْدَ اللَّهِ خَيْرُهُمْ لِصَاحِبِهِ، وَخَيْرُ الْجِيرَانِ عِنْدَ اللَّهِ خَيْرُهُمْ لِجَارِهِ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

311- Ji 'Ebdullahê Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Baştirînê hevalan li ba Xwedê ew e, yê ku ji hevalê xwe re baş e. Û baştirînê cîranan jî li ba Xwedê ew e, yê ku ji cîranê xwe re qenc e." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye dereca vê hedîsê hesen e.*

## بَابُ بِرِّ الْوَالِدَيْنِ وَصِلَةِ الأَرْحَامِ

## HEQÊ DÊ Û BAVAN Û SILEYA REHMÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَاعْبُدُوا اللَّهَ وَلَا تُشْرِكُوا بِهِ شَيْئًا وَبِالْوَالِدَيْنِ إِحْسَانًا وَبِذِي الْقُرْبَى وَالْيَتَامَى وَالْمَسَاكِينِ وَالْجَارِ ذِي الْقُرْبَى وَالْجَارِ الْجُنُبِ وَالصَّاحِبِ بِالْجَنْبِ وَابْنِ السَّبِيلِ وَمَا مَلَكَتْ أَيْمَانُكُمْ﴾

"Hûn îbadetê Xwedê bikin û qet şirîkan jê re çênekin. Qenciyê digel dê û bav û eqrebayên xwe bikin. Hem qenciyê digel sêwiyan, belengazan, cîranên xwe yên nêzîk (çi cîhetê malê ve, çi cîhetê nesebê ve û çi jî cîhetê din ve be.) û yên dûr, hevalên cem xwe, rêwî (yên ku mêvan in) û hem ewanê ku bindestên we de (kole û cariye) ne."[1]

﴿وَاتَّقُوا اللَّهَ الَّذِي تَسَاءَلُونَ بِهِ وَالأَرْحَامَ﴾

"Îta'eta wî Xwedayî bikin ku hûn bi navê wî tiştan ji hevdu dixwazin (wekî ku tu bêji: Tu bi Xwedêkî filan tiştî bidî min) û hûn sileya rehmê jî qut nekin."[2]

﴿وَالَّذِينَ يَصِلُونَ مَا أَمَرَ اللَّهُ بِهِ أَنْ يُوصَلَ﴾.

"Ewna tiştê Xwedê gihandina wê emir kiriye, digihînin."[3]

﴿وَوَصَّيْنَا الإِنْسَانَ بِوَالِدَيْهِ حُسْناً﴾.

"Me şîret li însan kir ku qenciyê li dê û bavê xwe bike."[4]

1 Nîsa, 4/36.
2 Nîsa, 4/1.
3 Re'd, 13/21. Li gor mufessiran maneya vê ayetê ev e: Berdewam sileya rehmê bi eqreba û nêzîkên xwe re dikin û hem jî maf û huqûqê însanan bi cih tînin.
4 'Enkebût, 29/8.

﴿وَقَضَى رَبُّكَ أَلاَّ تَعْبُدُوا إِلَّا إِيَّاهُ وَبِالْوَالِدَيْنِ إِحْسَاناً إِمَّا يَبْلُغَنَّ عِنْدَكَ الْكِبَرَ أَحَدُهُمَا أَوْ كِلَاهُمَا فَلَا تَقُلْ لَهُمَا أُفٍّ وَلَا تَنْهَرْهُمَا وَقُلْ لَهُمَا قَوْلاً كَرِيماً ۞ وَاخْفِضْ لَهُمَا جَنَاحَ الذُّلِّ مِنَ الرَّحْمَةِ وَقُلْ رَبِّ ارْحَمْهُمَا كَمَا رَبَّيَانِي صَغِيراً﴾.

"Rebbê te wiha darizand: Hûn ji xeynê wî re îbadet nekin û qenciyê jî bi dê û bavê xwe bikin. Heger yek ji dê û bavê te û yan jî her du li cem te gihîştine dema kalbûnê, tu ji wan re "of" jî nebêje. Tu bi wan re şer neke/ neqehire. Û ji wan re bi gotinên xweş bipeyive. Tu baskê xwe yê rehmê ji wan re daxîne û bêje: Ya Reb! Çawa ewan di piçûktiya min de ez xwedî kirim, tu jî wilo rehmê li wan bike."[1]

﴿وَوَصَّيْنَا الإِنْسَانَ بِوَالِدَيْهِ حَمَلَتْهُ أُمُّهُ وَهْنًا عَلَى وَهْنٍ وَفِصَالُهُ فِي عَامَيْنِ أَنِ اشْكُرْ لِي وَلِوَالِدَيْكَ﴾.

"Me şîret li însan kir ku qenciyê li dê û bavê xwe bike. Dayika wî bi pir zehmetan bi wî hamîle ma û şîr mêjana wî jî du (2) salan dikşîne. Li ser vê yekê tu ji min û ji dê û bavê xwe re şikur bike."[2]

٣١٢- عَنْ أَبِي عَبْدِ الرَّحْمَنِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: سَأَلْتُ النَّبِيَّ ﷺ: (أَيُّ الْعَمَلِ أَحَبُّ إِلَى اللَّهِ؟) قَالَ: (الصَّلَاةُ عَلَى وَقْتِهَا) قُلْتُ: ثُمَّ أَيٌّ؟ قَالَ: (بِرُّ الْوَالِدَيْنِ) قُلْتُ: ثُمَّ أَيٌّ؟ قَالَ: (الْجِهَادُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

312- Ji Ebû 'Ebdurrehman 'Ebdullahê kurê Mes'ûd (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) pirsiyar kir: Kîjan kar/'emel pirtir ji aliyê Xwedê ve tê hezkirin? Got: "Di wextê wê de kirina nimêjê." Min got: Paşê kîjan e? Got: "Qenciya li dê û bavê ye." Min got: Paşê kîjan e? Got: "Cîhada di rêya Xwedê de ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣١٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (لَا يَجْزِي وَلَدٌ وَالِداً إِلَّا أَنْ يَجِدَهُ مَمْلُوكًا فَيَشْتَرِيَهُ فَيُعْتِقَهُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

313- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Tu ewlad

1 Îsra, 17/23-24.
2 Luqman, 31/14.

heqê bavê xwe eda nake, meger ku bavê wî bi koletî bikire û azad bike jî." *Muslim rîwayet kiriye.*

٣١٤- وَعَنْهُ أَيْضاً ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (مَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الآخِرِ فَلْيُكْرِمْ ضَيْفَهُ، وَمَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الآخِرِ فَلْيَصِلْ رَحِمَهُ، وَمَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الآخِرِ فَلْيَقُلْ خَيْرًا أَوْ لِيَصْمُتْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

314- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ew kesê ku bawerî bi Xwedê û bi roja axretê aniye bila ew qedrê mêvanê xwe bigire. Ew kesê ku bawerî bi Xwedê û bi roja axretê aniye bila ew sileya rehmê bike. Ew kesê ku bawerî bi Xwedê û bi roja axretê aniye bila a xêr bêje û yan jî bila xwe kerr bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣١٥- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ اللَّهَ خَلَقَ الْخَلْقَ حَتَّى إِذَا فَرَغَ مِنْهُمْ قَامَتِ الرَّحِمُ فَقَالَتْ: هَذَا مَقَامُ الْعَائِذِ بِكَ مِنَ الْقَطِيعَةِ، قَالَ: نَعَمْ، أَمَا تَرْضَيْنَ أَنْ أَصِلَ مَنْ وَصَلَكِ، وَأَقْطَعَ مَنْ قَطَعَكِ؟ قَالَتْ: بَلَى، يَا رَبِّ قَالَ: فَذلِكَ لَكِ، ثم قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ اقْرَؤُا إِنْ شِئْتُمْ ﴿فَهَلْ عَسَيْتُمْ إِنْ تَوَلَّيْتُمْ أَنْ تُفْسِدُوا فِي الأَرْضِ وَتُقَطِّعُوا أَرْحَامَكُمْ أُولَئِكَ الَّذِينَ لَعَنَهُمُ اللَّهُ فَأَصَمَّهُمْ وَأَعْمَى أَبْصَارَهُمْ﴾ رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ لِلْبُخَارِيِّ: (فَقَالَ اللَّهُ تَعَالَى: مَنْ وَصَلَكِ وَصَلْتُهُ، وَمَنْ قَطَعَكِ قَطَعْتُهُ).

315- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman Xweda kaînat afirand, wextê ji afirandina wê vala bû; rehm (peywendiya eqrebatiyê) rabû û sekinî di hizûra Xwedê de û got: Ev sekna wî kesê ku ji qutkirina 'elqa mirovatiyê xwe diparêze ye. Xwedayê te'ala got: Belê. Ma qey tu kêfxweş nabî ku ez 'elqa xwe ji wî mirovê ku te nabire, nebirim û ez 'elaqa xwe ji wî mirovê ku te dibire,, bibirim? Rehmê got: Belê, Rebbê min. Xwedê got: Ew ji te re heye. Paşê jî Pêxemberê Xwedê (s.) got: Heger we bivê vê ayetê bixwînin: *"Gelî munafiqan! Dibe ku hûn derbasî ser kar bibin li ser rûyê erdê xerabiyê derxin û sileya rehmê jî bibirin? Ewê wisa Xwedê 'ezze we celle lanet lê kiriye. Û ew kerr kiriye û çavê wan jî kor kiriye."*[1] *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 Muhemmed, 47/22-23.

  

Di rîwayeta Buxarî de wiha ye: "Li ser vê yekê Xwedê 'ezze we celle got: Ey rehm! Ew kesê ku te nebire ez jî wî nabirim (yanî ew kesê ku 'elaqê nebire ezê jî rehmê lê bikim). Lêbelê ew kesê ku te bibire ezê jî wî bibirim (yanî ew kesê elaqê bibire ezê jî wî bihêlim bi halê wî û qet'a rehmê ji wî bikim)."

٣١٦- وَعَنْهُ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: (يَا رَسُولَ اللَّهِ، مَنْ أَحَقُّ النَّاسِ بِحُسْنِ صَحَابَتِي؟ قَالَ: (أُمُّكَ) قَالَ: ثُمَّ مَنْ؟ قَالَ: (أُمُّكَ) قَالَ: ثُمَّ مَنْ قَالَ: (أُمُّكَ) قَالَ ثُمَّ مَنْ؟ قَالَ: (أَبُوكَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: يَا رَسُولَ اللَّهِ مَنْ أَحَقُّ النَّاسِ بِحُسْنِ الصُّحْبَةِ؟ قَالَ: (أُمُّكَ، ثُمَّ أُمُّكَ، ثُمَّ أُمُّكَ، ثُمَّ أَبَاكَ ثُمَّ أَدْنَاكَ أَدْنَاكَ).

316- Dîsa ji wî (r.), got: Mirovek hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û got: Ya Resûlê Xwedê! Ji însanan kîjan şîrjawtir e ku ez digel wî mu'amela baş bikim? Got: "Dayika te." Ewî mirovî got: Paşê kî ye? Got: "Dayika te ye." Dîsa ewî mirovî got: Paşê kî ye? Got: "Dayika te ye." Carek din jî ewî mirovî got: Paşê kî ye? Got: "Bavê te ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetekê de jî wiha ye: Ey Pêxemberê Xwedê! Ji însanan kîjan şîrjawtir e ku ez digel wî mu'amela baş bikim? Got: "Dayika te ye, paşê dayikan te ye, paşê dayika te ye, paşê jî bavê te yê û pişt re jî bi rêzê ve eqrebayên te ewê ku nêzîktirê te ye."

٣١٧- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (رَغِمَ أَنْفُ، ثُمَّ رَغِمَ أَنْفُ، ثُمَّ رَغِمَ أَنْفُ، مَنْ أَدْرَكَ أَبَوَيْهِ عِنْدَ الْكِبَرِ: أَحَدَهُمَا أَوْ كِلَيْهِمَا فَلَمْ يَدْخُلِ الْجَنَّةَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

317- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Xwelî lê be! Xwelî lê be! Xwelî lê be! li wî kesî ku bigihêje kalbûna yekî ji dê û bavê xwe û yan jî her dukan û neçe cennetê." *Muslim rîwayet kiriye.*

٣١٨- وَعَنْهُ أَنَّ رَجُلاً قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنَّ لِي قَرَابَةً أَصِلُهُمْ وَيَقْطَعُونِي، وَأُحْسِنُ إِلَيْهِمْ وَيُسِيئُونَ إِلَيَّ، وَأَحْلُمُ عَنْهُمْ وَيَجْهَلُونَ عَلَيَّ، فَقَالَ: (لَئِنْ كُنْتَ كَمَا قُلْتَ فَكَأَنَّمَا تُسِفُّهُمُ

تُسِفُّهُمُ الْمَلَّ، وَلَا يَزَالُ مَعَكَ مِنَ اللَّهِ ظَهِيرٌ عَلَيْهِمْ مَا دُمْتَ عَلَى ذَلِكَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

318- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî got: Ya Resûlê Xwedê! Bêguman eqrebayên min hene û ez diçim ba wan û têm, lêbelê ew 'elaqa xwe ji min dibirin. Ez qenciyê li wan dikim, ew jî xerabiyê li min dikin. Ez mu'amela hilmê (nermê) bi wan re dikim, lêbelê ew mu'amela cehlê bi min re dikin. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê got: "Heger çawa dibêjî tu wisa bî, her wekî tu xweliya germ bi wan didî xwarinê. Hingî tu wiha dom bikî dê Xwedê li hember wan arîkarê te be." *Muslim rîwayet kiriye.*

٣١٩- عَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ أَحَبَّ أَنْ يُبْسَطَ لَهُ فِي رِزْقِهِ، وَيُنْسَأَ لَهُ فِي أَثَرِهِ فَلْيَصِلْ رَحِمَهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

319- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin. Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ew kesê bixwaze ku rizqê wî zêde bibe û ecelê wî jî bi derengi bi keve bila ew sileya rehmê bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٢٠- وَعَنْهُ قَالَ: كَانَ أَبُو طَلْحَةَ ﷺ أَكْثَرَ الأَنْصَارِ بِالْمَدِينَةِ مَالاً مِنْ نَخْلٍ، وَكَانَ أَحَبُّ أَمْوَالِهِ إِلَيْهِ بَيْرُحَاءَ، وَكَانَتْ مُسْتَقْبِلَةَ الْمَسْجِدِ، وَكَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَدْخُلُهَا وَيَشْرَبُ مِنْ مَاءٍ فِيهَا طَيِّبٍ، قَالَ أَنَسٌ فَلَمَّا أُنْزِلَتْ هَذِهِ الآيَةُ ﴿لَنْ تَنَالُوا الْبِرَّ حَتَّىٰ تُنْفِقُوا مِمَّا تُحِبُّونَ﴾ قَامَ أَبُو طَلْحَةَ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنَّ اللَّهَ تَبَارَكَ وَتَعَالَى يَقُولُ: ﴿لَنْ تَنَالُوا الْبِرَّ حَتَّى تُنْفِقُوا مِمَّا تُحِبُّونَ﴾ وَإِنَّ أَحَبَّ أَمْوَالِي إِلَيَّ بَيْرُحَاءَ، وَإِنَّهَا صَدَقَةٌ لِلَّهِ أَرْجُو بِرَّهَا وَذُخْرَهَا عِنْدَ اللَّهِ، فَضَعْهَا يَا رَسُولَ اللَّهِ حَيْثُ أَرَاكَ اللَّهُ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (بَخٍ ذَلِكَ مَالٌ رَابِحٌ، ذَلِكَ مَالٌ رَابِحٌ، وَقَدْ سَمِعْتُ مَا قُلْتَ، وَإِنِّي أَرَى أَنْ تَجْعَلَهَا فِي الأَقْرَبِينَ) فَقَالَ أَبُو طَلْحَةَ: أَفْعَلُ يَا رَسُولَ اللَّهِ، فَقَسَمَهَا أَبُو طَلْحَةَ فِي أَقَارِبِهِ وَبَنِي عَمِّهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

320- Dîsa ji wî (r.), got: Ebû Telhe (r.) di Medînê de ji aliyê xurmeyan ve dewlemendtirê Ensaran bû û ji hemû malê wî jî yê ku pirtir jê hezdikir "Beyreha" bû. Ew jî diket aliyê qibleya mizgeftê. Pêxemberê Xwedê (s.) carna diçû nav wî bostanê xurmeyan û ji ava wî ya xweş ku tê de bû ve-

dixwar. Enes got: Wextê ku ayeta; *"heta ku hûn ji wî tiştê ku hûn jê hez dikin înfaq nekin hûn nagihêjin xêrê (yan cennetê)"*[1] nazil bû, Ebû Telhe hate ba Pêxemberê Xwedê (s.) û jê re got: Ey Resûlê Xwedê! Bêguman Xweda te'ala: "Heta ku hûn ji wî tiştê ku hûn jê hezdikin înfaq nekin hûn nagihêjin xêrê (yan cennetê)." dibêje û bêguman li ba min hezjêkirê malê min jî Beyreha ye. Vêca ew ji bo wechê Xwedê sedeqe ye. Ez hêvîdar im ku ew ba Xwedê te'ala bibe xêr û zexîra min. Vêca Ya Resûlê Xwedê, tu wê deyne di wî cihê ku Xwedê nîşanî te daye (yanî di wî cihê de serf bike ku Xwedê jê hezkirî ye). Li ser vê gotinê Resûlê Ekrem (s.) got: "Ev çiqas tiştekî baş û kardar e. Min gotina te bihîst û ez birê dibînim ku tu Beyrehayê li eqrebayên xwe parve biki." Ebû Telhe got: Ez wilo bikim ya Resûlê Xwedê. Vêca Ebû Telhe ew rezê xurmeyan li eqrebayên xwe parve kir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٢١- عَنْ عَبْدَ اللَّهِ بْنَ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ قَالَ: أَقْبَلَ رَجُلٌ إِلَى نَبِيِّ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: (أُبَايِعُكَ عَلَى الْهِجْرَةِ وَالْجِهَادِ أَبْتَغِي الأَجْرَ مِنَ اللَّهِ قَالَ: (فَهَلْ مِنْ وَالِدَيْكَ أَحَدٌ حَيٌّ؟) قَالَ: نَعَمْ، بَلْ كِلَاهُمَا، قَالَ: (فَتَبْتَغِي الأَجْرَ مِنَ اللَّهِ؟) قَالَ: نَعَمْ قَالَ: (فَارْجِعْ إِلَى وَالِدَيْكَ فَأَحْسِنْ صُحْبَتَهُمَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

وَهَذَا لَفْظ مُسْلِمٍ. وَفِي رِوَايَة لَهُمَا: جَاءَ رَجُلٌ فَاستَأْذَنَهُ فِي الجِهَادِ، قَالَ: (أَحَيُّ وَالِدَاكَ؟) قَالَ: نَعَمْ، قَالَ:(فَفِيهِمَا فَجَاهِدْ).

321- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.), got: Mirovekî berê xwe da û hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û jê re got: "Ya Resûlê Xwedê! Ez li ser hîcret û cîhadê bî'atê bi te re dikim û ez daxwaza xêrê jî ji Xwedê te'ala dikim. Pêxemberê Xwedê (s.) ji wî mirovî re got: "Yek ji dê û bavê te sax heye?" Got: Belê, her du jî. Resûlê Xwedê got: "Tu xêrê ji Xwedê dixwazî?" Got: Belê. Resûlê Ekrem (s.) jî got: "Tu bizvire cem dê û bavê xwe û qenciyê li wan bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Ev lefzê Muslim e. Rîwayetek din di Muslim û Buxarî de wiha ye: Mirovek hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û îzna cîhadê jê xwest. Pêxemberê Xwedê (s.) ji wî kesî re got: "Dê û bavê te sax in? Got: Belê. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Tu di wan de cîhadê bike."

1 Alî Îmran, 3/92.

٣٢٢- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَيْسَ الْوَاصِلُ بِالْمُكَافِىءِ، وَلَكِنَّ الْوَاصِلَ الَّذِي إِذَا قَطَعَتْ رَحِمُهُ وَصَلَهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

322- Dîsa ji wî, Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Kesê ku li hemberê qenciya eqrebayên xwe qenciyê dike ew ne qencîkar e. Lêbelê elaqa eqrebatiyê ew e gava eqreba 'eleqeyê jê biriye 'eleqeyê bidomîne." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٣٢٣- عَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (اَلرَّحِمُ مُعَلَّقَةٌ بِالْعَرْشِ تَقُولُ: مَنْ وَصَلَنِي وَصَلَهُ اللَّهُ، وَمَنْ قَطَعَنِي قَطَعَهُ اللَّهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

323- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Rehm bi 'erş ve hatiye girêdan û dibêje: Ew kesê ku 'eleqa xwe ji min nebire Xwedê te'ala jî 'eleqa xwe ji wî nabire û ew kesê ku elaqa xwe ji min bibire Xwedê jî 'elaqa xwe ji wî dibire." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٢٤- عَنْ أُمِّ الْمُؤْمِنِينَ مَيْمُونَةَ بِنْتَ الْحَارِثِ ﵂ أَنَّهَا أَعْتَقَتْ وَلِيدَةً وَلَمْ تَسْتَأْذِنِ النَّبِيَّ ﷺ فَلَمَّا كَانَ يَوْمُهَا الَّذِي يَدُورُ عَلَيْهَا فِيهِ قَالَتْ: أَشَعَرْتَ يَا رَسُولَ اللَّهِ أَنِّي أَعْتَقْتُ وَلِيدَتِي؟ قَالَ: (أَوَفَعَلْتِ؟) قَالَتْ: نَعَمْ، قَالَ: (أَمَا إِنَّكِ لَوْ أَعْطَيْتِهَا أَخْوَالَكِ كَانَ أَعْظَمَ لأَجْرِكِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

324- Ji dayika mu'minan ku Meymûne keça Haris e (r.), bêguman wê cariyek azad kiribû, lêbelê destûr ji Resûlê Xwedê nestandibû. Wexta Pêxemberê Xwedê (s.) di şeva dora wê de hate cem, ewê got: "Ya Resûlê Xwedê! Tu pê agahdar bûyî ku min cariya xwe azad kiriye? Resûlê Ekrem (s.) got: Te bi rastî azad kiriye? Got: Belê. Resûlê Xwedê got: Heger te ew cariye daba xalanê xwe, tu dê zêdetir xwedanxêr bibaya." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٢٥- عَنْ أَسْمَاءَ بِنْتِ أَبِي بَكْرٍ ﵄ قَالَتْ: قَدِمَتْ عَلَيَّ أُمِّي وَهِيَ مُشْرِكَةٌ فِي عَهْدِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَاسْتَفْتَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قُلْتُ: قَدِمَتْ عَلَيَّ أُمِّي وَهِيَ رَاغِبَةٌ، أَفَأَصِلُ أُمِّي؟ قَالَ: (نَعَمْ صِلِي أُمَّكِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

325- Ji Esmaya keça Ebû Bekirê Siddîq (r.), got: Di heyama Pêxember

(s.) de dayika min hate ba min welhal ew muşrik bû. Vêca min teleba fetwayê ji Pêxemberê Xwedê (s.) kir û min got: Ya Resûlê Xwedê, dayika min bêriya min kiriye û hatiye ba min, gelo ez dikarim qenciyê lê bikim? Got: "Belê. Tu qenciyê li dayika xwe bike." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٣٢٦- عَنْ زَيْنَبَ الثقفية إمْرَأَةِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (تَصَدَّقْنَ يَا مَعْشَرَ النِّسَاءِ وَلَوْ مِنْ حُلِيِّكُنَّ) قَالَتْ: فَرَجَعْتُ إِلَى عَبْدِ اللَّهِ فَقُلْتُ: إِنَّكَ رَجُلٌ خَفِيفُ ذَاتِ الْيَدِ، وَإِنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَدْ أَمَرَنَا بِالصَّدَقَةِ فَأْتِهِ فَاسْأَلْهُ، فَإِنْ كَانَ ذَلِكَ يَجْزِي عَنِّي، وَإِلَّا صَرَفْتُهَا إِلَى غَيْرِكُمْ، فَقَالَ لِي عَبْدُ اللَّهِ: بَلِ ائْتِيهِ أَنْتِ، قَالَتْ: فَانْطَلَقْتُ فَإِذَا إِمْرَأَةٌ مِنَ الأَنْصَارِ بِبَابِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ حَاجَتِي حَاجَتُهَا، وَكَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ قَدْ أُلْقِيَتْ عَلَيْهِ الْمَهَابَةُ، فَخَرَجَ عَلَيْنَا بِلَالٌ فَقُلْنَا لَهُ: ائْتِ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَأَخْبِرْهُ أَنَّ إِمْرَأَتَيْنِ بِالْبَابِ تَسْأَلَانِكَ: أَتُجْزِئُ الصَّدَقَةُ عَنْهُمَا عَلَى أَزْوَاجِهِمَا وَعَلَى أَيْتَامٍ فِي حُجُورِهِمَا، وَلَا تُخْبِرْهُ مَنْ نَحْنُ، فَدَخَلَ بِلَالٌ عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَسَأَلَهُ، فَقَالَ لَهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ هُمَا) فَقَالَ: إِمْرَأَةٌ مِنَ الأَنْصَارِ وَزَيْنَبُ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَيُّ الزَّيَانِبِ؟) قَالَ: إِمْرَأَةُ عَبْدِ اللَّهِ، فَقَالَ لَهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَهُمَا أَجْرَانِ: أَجْرُ الْقَرَابَةِ، وَأَجْرُ الصَّدَقَةِ).

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

326- Ji Zeyneba Seqefî ya ku zewca 'Ebdullahê kurê Mes'ûd e (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Gelî civata jinan! Xêr û sedeqan bidin, her çiqas ji xemlê we be jî." Zeynebê got: Ez vegeriyam û hatim cem 'Ebdullah û min jê re got: Bêguman tu mirovek destdeng î û Pêxemberê Xwedê (s.) jî emrê me kir bi sedeqe dayinê. Tu here cem Pêxemberê Xwedê (s.) jê pirsiyar bike eger ewî meblexê ku li te û li zarokê te serf bikim bikeve ciyê sedeqê li we; eger nekeve ciyê sedeqê ezê di ciyê din de serf bikim. 'Ebdullah got: Tu bi xwe here cem Pêxemberê Xwedê. Zeynebê got: Ez çûm û min dît ku jinek Ensarî jî li ber derê deriyê mala Resûlê Xwedê (s.) bû û hewceya wê jî wekî hewceya min bû. Pêxemberê Xwedê (s.) bi heybet bû (û ji bo vê yekê me şerm dikir ku em herin hizûra wî). Bilalê Hebeşî derket û hate cem me, me jî jê re got: Here cem Resûlê Xwedê û jê re bêjî du jinik li ber

derî ne û ji te pirs dikin: Ka ew dikarin ku sedeqa xwe bidine mêrê xwe û sêwiyê di parezgariya xwe de? Bes tu ji Resûlê Xwedê re mebêje ku em çi kes in. Bilal çû cem Pêxemberê Xwedê (s.) û jê pirsiyar kir. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ew çi kes in?" Bilal got: Jinek ji Ensariyan e û Zeyneb e. Resûlê Xwedê (s.) got: "Kîjan Zeyneb e ew?" Bilal got: Jina 'Ebdullahê kurê Mes'ûd e. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Du xêr ji bo wan hene; yek xêra eqrebatiyê, yek jî ya sedeqê ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٢٧- عَنْ أَبِي سُفْيَانَ صَخْرِ بْنِ حَرْبٍ ﷺ فِي حَدِيثِهِ الطَّوِيلِ فِي قِصَّةِ هِرَقْلَ، أَنَّ هِرَقْلَ قَالَ لأَبِي سُفْيَانَ: فَمَاذَا يَأْمُرُكُمْ بِهِ؟ يَعْنِي النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: قُلْتُ: يَقُولُ: اعْبُدُوا اللَّهَ وَحْدَهُ وَلَا تُشْرِكُوا بِهِ شَيْئاً، وَاتْرُكُوا مَا يَقُولُ آبَاؤُكُمْ، وَيَأْمُرُنَا بِالصَّلَاةِ وَالصِّدْقِ وَالْعَفَافِ وَالصِّلَةِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

327- Ji Ebû Sufyanê Sexrê kurê Herb (r.), di hedîsa wî ya dirêj di derheqê qisseta Hireql de hatiye rîwayetkirin ku Hireql ji Ebû Sufyan re gotbû: Ew çi emrî we dike? (Yanî Pêxember (s.) Ebû Sufyan dibêje) Min jî got: Ew dibêje: ji Xwedê bi tenê re îbadet bikin û jê re tu şirîka çênekin, gotina bav û kalê xwe biterikînin. Û emrê me jî dike bi kirina nimêjê, bi rastgotinê, bi terikandina tiştê heram û bi sileya rehmê. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٢٨- عَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (إِنَّكُمْ سَتَفْتَحُونَ أَرْضًا يُذْكَرُ فِيهَا الْقِيرَاطُ)

وَفِي رِوَايَةٍ: (سَتَفْتَحُونَ مِصْرَ، وَهِيَ أَرْضٌ يُسَمَّى فِيهَا الْقِيرَاطُ، فَاسْتَوْصُوا بِأَهْلِهَا خَيْراً، فَإِنَّ لَهُمْ ذِمَّةً وَرَحِماً).

وَفِي رِوَايَةٍ: فَإِذَا افْتَتَحْتُمُوهَا فَأَحْسِنُوا إِلَى أَهْلِهَا، فَإِنَّ لَهُمْ ذِمَّةً وَرَحِمًا) أَوْ قَالَ: (ذِمَّةً وَصِهْراً). رَوَاهُ مُسْلِم.

328- Ji Ebû Zerr (r.), hatiye rîwayetkirin: Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bêguman erdekî ku tê de qala "qîrat" tê kirin hûnê vegirînin."

Di rîwayetek din de wiha ye: "Misrê ku tê de "qîrat" tê 'emilandin hûnê vegirînin. Şîreta min li we ku, hûn qenciyê bi wan bikim bikin, lewra 'elaqa wan bi me re ya zimmet û eqrebatiyê ye."

Di rîwayetek dîn de jî wiha ye: "Wextê ku we Misir wergirt, hûn qenciyê bi

ehlê wê re bikin, lewra bêguman ‘elaqa wan bi me re ya zimmet û eqrebatiyê ye. An jî wiha got: Zimmet û xizimatiyê ye.” *Muslim riwayet kiriye.*

٣٢٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ لَمَّا نَزَلَتْ هَذِهِ الآيَةُ ﴿وَأَنْذِرْ عَشِيرَتَكَ الأَقْرَبِينَ﴾ الشُّعَرَاء ٢١٤ دَعَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ قُرَيْشاً فَاجْتَمَعُوا، فَعَمَّ وَخَصَّ فَقَالَ: (يَا بَنِي عَبْدِ شَمْسٍ، يَا بَنِي كَعْبِ بْنِ لُؤَيٍّ أَنْقِذُوا أَنْفُسَكُمْ مِنَ النَّارِ، يَا بَنِي مُرَّةَ بنِ كَعْبٍ أَنْقِذُوا أَنْفُسَكُمْ مِنَ النَّارِ يَا بَنِي عَبْدِ مَنَافٍ أَنْقِذُوا أَنْفُسَكُمْ مِنَ النَّارِ، يَا بَنِي هَاشِمٍ أَنْقِذُوا أَنْفُسَكُمْ مِنَ النَّارِ، يَا بَنِي عَبْدِ الْمُطَّلِبِ أَنْقِذُوا أَنْفُسَكُمْ مِنَ النَّارِ، يَا فَاطِمَةُ أَنْقِذِي نَفْسَكِ مِنَ النَّارِ، فَإِنِّي لَا أَمْلِكُ لَكُمْ مِنَ اللَّهِ شَيْئًا غَيْرَ أَنَّ لَكُمْ رَحِمًا سَأَبُلُّهَا بِبَلَالِهَا). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

329- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Wextê ayeta; “tu eqrebayê xwe yên nêzîk hişyar bike” nazil bû, Pêxemberê Xwedê (s.) gazî Qureyşiyan kir û ew jî kom bûn. Pêxemberê Xwedê (s.) hem gelemperî û hem jî bi taybetî got: “Gelî lawê ‘Ebduşşems û gelî lawê Ke‘bê kurê Lû’ey! Hûn xwe ji êgir biparêzin. Gelî lawê Murreyê kurê Ke‘b! Hûn xwe ji êgir biparêzin. Gelî lawê ‘Ebdî Menaf! Hûn xwe ji êgir biparêzin. Gelî lawê Haşim! Hûn xwe ji êgir biparêzin. Gelî lawê ‘Ebdulmuttelib! Hûn xwe ji êgir biparêzin. Ya Fatime! Tu jî xwe ji êgir biparêze. Lewra bêguman ji aliyê Xwedê ve tu kara min nagihêje we. Lêbelê bi sedem ku hûn eqrebayên min in, ezê jî rî‘ayeta sileya rehmê bikim.” *Muslim riwayet kiriye.*

٣٣٠- عَنْ أَبِي عَبْدِ اللَّهِ عَمْرِو بْنَ الْعَاصِ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ جِهَاراً غَيْرَ مُسِرٍّ يَقُولُ: (إِنَّ آلَ بَنِي فُلَانٍ لَيْسُوا بِأَوْلِيَائِي، إِنَّمَا وَلِيِّيَ اللَّهُ وَصَالِحُ الْمُؤْمِنِينَ، وَلَكِنْ لَهُمْ رَحِمٌ أَبُلُّهَا بِبَلَاهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

330- Ji ‘Ebdullahê kurê ‘Emrê kurê ‘As (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst ku eşkere û ne bi dizî wiha digot: “Bêguman zar û zêçê filan kesê (ku eqrebayê mine ne misilman in) ne dostê min in. Bes bêguman dostê min Xwedê (c.c.) ye û mu’minên salih in. Lêbelê eqrebatiya min bi wan re heye, ezê jî rî‘ayeta wê bikim.” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٣٣١- عَنْ أَبِي أَيُّوبَ خَالِدِ بن زَيْدٍ الأَنْصَارِي ﷺ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَخْبِرْنِي بِعَمَلٍ يُدْخِلُنِي الْجَنَّةَ؟ وَيُبَاعِدُنِي مِنَ النَّارِ فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (تَعْبُدُ اللَّهَ وَلَا تُشْرِكُ بِهِ شَيْئاً، وَتُقِيمُ الصَّلَاةَ وَتُؤْتِي الزَّكَاةَ، وَتَصِلُ الرَّحِمَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

331- Ji Ebû Eyyûb Xalidê kurê Zeydê Ensarî (r.), got: Bêguman mirovek hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û jê re got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu ji min re 'emelekî wisa bibêje ku ew bibe sedema çûna min a cennetê û min ji êgir jî dûr bike. Resûlê Xwedê (s.) jî, got: "Tu îbadetê Xwedê te'ala bike û jê re tu şirîkan çêneke, nimêj bike, zikatê bide û sileya rehmê jî pêk bîne." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٣٢- عَنْ سَلْمَانَ بْنِ عَامِرٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِذَا أَفْطَرَ أَحَدُكُمْ فَلْيُفْطِرْ عَلَى تَمْرٍ فَإِنَّهُ بَرَكَةٌ، فَإِنْ لَمْ يَجِدْ تَمْراً فَالْمَاءُ، فَإِنَّهُ طَهُورٌ، وقَالَ: الصَّدَقَةُ عَلَى الْمِسْكِينِ صَدَقَةٌ، وَعَلَى ذِي الرَّحِمِ ثِنْتَانِ، صَدَقَةٌ وَصِلَةٌ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

332- Ji Selmanê kurê 'Amir (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Wextê yekî ji we fitara xwe vekir, bila fitara xwe bi xurmeyê veke. Lewra bêguman ew bereket e. Heger ewî xurme nedît, bila bi avê fitara xwe veke. Lewra bêguman ew paqij e. Dîsa Resûlê Xwedê (s.) berdewam kir û got: "Sedeqedana miskînî sedeqeyek e. Lêbelê sedeqa eqrebayî du (2) sedeqe ne: Yek sedeqe ye û ya din jî sileya rehmê ye." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye dereca wê hesen e.*

٣٣٣- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: كَانَتْ تَحْتِي إِمْرَأَةٌ، وَكُنْتُ أُحِبُّهَا، وَكَانَ عُمَرُ يَكْرَهُهَا، فَقَالَ لِي: طَلِّقْهَا، فَأَبَيْتُ، فَأَتَى عُمَرُ النَّبِيَّ ﷺ فَذَكَرَ ذَلِكَ لَهُ، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (طَلِّقْهَا). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيح.

333- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Jinikek ku min pir jê hezdikir ez pê re zewicîbûm. Lêbelê Hz. 'Umer jê heznedikir û ji min re digot: wê berde. Min jî qebûl nekir. (Bavê min) 'Umer (r.) hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û ev yeka jê re got. Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) jî got: "Tu wê berde." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine.Û Tirmizî gotiye dereca wê hesen e û sehîh e.*

٣٣٤- عَنْ أَبِي الدَّرْدَاءِ ﷺ أَنَّ رَجُلاً أَتَاهُ فَقَالَ: إِنَّ لِي إِمْرَأَةً وَإِنَّ أُمِّي تَأْمُرُنِي بِطَلَاقِهَا،

قَالَ أَبُو الدَّرْدَاءِ سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (الْوَالِدُ أَوْسَطُ أَبْوَابِ الْجَنَّةِ، فَإِنْ شِئْتَ فَأَضِعْ ذَلِكَ الْبَابَ أَوِ احْفَظْهُ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ صَحِيحٌ.

334- Ji Ebû Derda (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovek hate cem wî û jê re got: Bêguman jineke min heye. Lê dayika min jî emrê min dike bi berdana wê. Tu çi dibêjî. Ebû Derda jî got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Dê û bav dergehên cennetê yê navendê ne. Vêca tu dixwazî wî dergehî berde û tu dixwazî di destê xwe de bistirîne.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye dereca wê sehîh e.*

٣٣٥- عَنِ الْبَرَاءِ بْنِ عَازِبٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (اَلْخَالَةُ بِمَنْزِلَةِ الأُمِّ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ صَحِيحٌ.

وَفِي البَابِ أَحَادِيثُ كَثِيرَةٌ مَشْهُورَةٌ: مِنها حَدِيث أَصْحَابِ الْغَارِ، وَحَدِيثُ جُرَيجِ، وَقَدْ سَبقَا. وَأَحَادِيثُ مَشْهُورَةٌ فِي الصَّحِيحِ حَذَفْتُهَا إِخْتِصَاراً، وَمِنْ أَهَمِّهَا حَدِيثُ عَمْرو بْنِ عَبَسة ﷺ الطَّوِيلُ الْمُشْتَمِلُ عَلَى جُمَلٍ كَثِيرةٍ مِنْ قَوَاعِدِ الإِسْلام وآدابه، وَسَأَذْكُرُهُ بِتَمَامِهِ إِن شَاءَ الله تَعَالَى فِي بَابِ الرَّجَاءِ، قَالَ فِيهِ:

335- Ji Berayê kurê ‘Azib (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Xalet/ xaltî di ciyê dayikê de ye.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye dereca wê hesen e û sehîh e.*

Di vî warî de zehf hedîsên sehîh yên meşhûr hene. Yek ji wan hedîsan xwediyên şikeftê û hedîsa Cureyc ewên ku derbasbûyî ne. Ji ber kurtbûnê min ew negotine. Hedîsa herî muhîm, hedîsa ‘Emr kurê ‘Ebse ye. Ew hedîsa ye ya ku dirêj e û behsa zehf bingehên Îslamê û adabên wê dike. Di behsa hêvîdariyan de ezê temamê hedîsê zikir bikim. Di vê hedîsê de dibêje:

٣٣٦- عَنْ عَمْرِو بْنِ عَبَسَةَ ﷺ قَالَ: دَخَلْتُ عَلَى النَّبِيِّ ﷺ بِمَكَّةَ- يَعْنِي فِي أَوَّلِ النُّبُوَّةِ- فَقُلْتُ لَهُ: مَا أَنْتَ؟ قَالَ: (نَبِيٌّ) فَقُلْتُ: وَمَا نَبِيٌّ؟ قَالَ: (أَرْسَلَنِيَ اللَّهُ تَعَالَى) فَقُلْتُ: بِأَيِّ شَيْءٍ أَرْسَلَكَ؟ قَالَ: (أَرْسَلَنِي بِصِلَةِ الأَرْحَامِ، وَكَسْرِ الأَوْثَانِ، وَأَنْ يُوَحَّدَ اللَّهُ لَا يُشْرِكُ بِهِ شَيْءٌ) وَذَكَرَ تَمَامَ الْحَدِيث، وَاللهُ تَعَالَى أَعْلَمُ، وبِهِ الْعَوْنُ وَالْقُوَّةُ.

336- Ji ‘Emrê kurê ‘Ebese (r.), got: Ez çûm ba Pêxemberê Xwedê (s.) di Mekkeyê de -yanî destpêka pêxemberiyê de- min jê re got: Tu çi kes î? Ewî

jî got: Ez Pêxember im. Min got: Pêxember çi kes e? Got: Xwedê ez şandime. Min got: Xweda tu bi çi şandî? Got: Bi sileya rehmê, şikandina pût seneman û bi yekîtiya Xwedê bê parastin û tu şirîk jê re neyêne çêkirin. Û temamê hedîsê zikir kir. Xwedê her zana ye û her bi wî ye arîkarî û quwet.

## بَابُ تَحْرِيمِ الْعقُوقِ وَقَطِيعَةِ الرَّحِمِ
## BÊEMRIYA DÊ Û BAVAN Û BIRRÎNA SILEYA REHMÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿فَهَلْ عَسَيْتُمْ إِنْ تَوَلَّيْتُمْ أَنْ تُفْسِدُوا فِي الأَرْضِ وَتُقَطِّعُوا أَرْحَامَكُمْ ۞ أُولَٰئِكَ الَّذِينَ لَعَنَهُمُ اللَّهُ فَأَصَمَّهُمْ وَأَعْمَى أَبْصَارَهُمْ﴾

"Gelî munafiqan! Dibe ku hûn derbasî ser kar bibin li ser rûyê erdê xerabiyê derxin û sileya rehmê jî bibirin? Ewên wisa Xweda lanet lê kiriye, ew kerr kiriye û çavê wan jî kor kiriye."[1]

﴿وَالَّذِينَ يَنْقُضُونَ عَهْدَ اللَّهِ مِنْ بَعْدِ مِيثَاقِهِ وَيَقْطَعُونَ مَا أَمَرَ اللَّهُ بِهِ أَنْ يُوصَلَ وَيُفْسِدُونَ فِي الأَرْضِ أُولَٰئِكَ لَهُمُ اللَّعْنَةُ وَلَهُمْ سُوءُ الدَّارِ﴾

"Ew kesê ku piştî soz dane Xwedê, sozên xwe nagirin û sileya rehmê ya ku Xweda emrê wê kiriye dibirin û hem li ser rûyê erdê fesadê (tevlihevî) derdixin; ji wan re lanet heye û hem ji wan re cîhekî xerab jî heye."[2]

﴿وَقَضَى رَبُّكَ أَلَّا تَعْبُدُوا إِلَّا إِيَّاهُ وَبِالْوَالِدَيْنِ إِحْسَانًا إِمَّا يَبْلُغَنَّ عِنْدَكَ الْكِبَرَ أَحَدُهُمَا أَوْ كِلَاهُمَا فَلَا تَقُلْ لَهُمَا أُفٍّ وَلَا تَنْهَرْهُمَا وَقُلْ لَهُمَا قَوْلاً كَرِيماً ۞ وَاخْفِضْ لَهُمَا جَنَاحَ الذُّلِّ مِنَ الرَّحْمَةِ وَقُلْ رَبِّ ارْحَمْهُمَا كَمَا رَبَّيَانِي صَغِيراً﴾

"Rebbê te wiha darizand: Hûn ji xeynê wî re îbadet nekin û qenciyê jî bi dê û bavê xwe bikin. Heger yek ji dê û bavê te û yan jî her du li cem te gihîştine dema kalbûnê, tu ji wan re "of" jî nebêje. Tu bi wan re şerneke/neqehire. Û bi wan re bi gotinên xweş bipeyive. Tu baskê xwe yê rehmê

1 Muhemmed, 47/22-23.
2 Re'd, 13/25.

ji wan re daxîne û bêje: Ya Reb! Çawa ewan di piçûktaya min de ez xwedî kirim, tu jî wilo rehmê li wan bike."[1]

٣٣٧- عَنْ أَبِي بَكْرَةَ نُفَيْعِ بنِ الحَارِثِ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (أَلَا أُنَبِّئُكُمْ بِأَكْبَرِ الْكَبَائِرِ) ثَلَاثًا، قُلْنَا: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: (الإِشْرَاكُ بِاللَّهِ وَعُقُوقُ الْوَالِدَيْنِ) وَجَلَسَ وَكَانَ مُتَّكِئاً فَقَالَ: (أَلَا وَقَوْلُ الزُّورِ، وَشَهَادَةُ الزُّورِ) قَالَ فَمَا زَالَ يُكَرِّرُهَا حَتَّى قُلْنَا: لَيْتَهُ سَكَتَ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

337- Ji Ebû Bekre Nufey' kurê Haris (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) sê caran gotiye: "Ez we ji mezintirînê gunehan agahdar bikim?" Me got: Belê, ya Resûlê Xwedê. Got. "Şirîkçêkirina ji Xwedê re û bêemriya dê û bavan." Pêxemberê Xwedê paldayî bû, rûnişt vêca got: "Bala xwe bidin min! Ê din jî gotina derewîn û şehdebûna derewîn e." Pêxember, ev gotina xwe her dubare kir, ta ku me got: Xweziya ew rawestiya. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٣٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بنِ العاصِ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (الْكَبَائِرُ: الإِشْرَاكُ بِاللَّهِ، وَعُقُوقُ الْوَالِدَيْنِ، وَقَتْلُ النَّفْسِ، وَالْيَمِينُ الْغَمُوسُ). رَوَاهُ البُخَارِي.

338- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Gunehên mezin: Şirîkçêkirin ji Xwedê re, bêemriya dê û bava, kuştina yekî bi neheqî û bi derew sondxwarin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٣٣٩- وَعَنْهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مِنَ الْكَبَائِرِ شَتْمُ الرَّجُلِ وَالِدَيْهِ) قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ، وَهَلْ يَشْتِمُ الرَّجُلُ وَالِدَيْهِ؟ قَالَ: (نَعَمْ يَسُبُّ أَبَا الرَّجُلِ فَيَسُبُّ أَبَاهُ، وَيَسُبُّ أُمَّهُ فَيَسُبُّ أُمَّهُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: (إِنَّ مِنْ أَكْبَرِ الْكَبَائِرِ أَنْ يَلْعَنَ الرَّجُلُ وَالِدَيْهِ) قِيلَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، وَكَيْفَ يَلْعَنُ الرَّجُلُ وَالِدَيْهِ؟ قَالَ: (يَسُبُّ الرَّجُلُ أَبَا الرَّجُلِ فَيَسُبُّ أَبَاهُ وَيَسُبُّ أُمَّهُ).

339- Dîsa ji wî, Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ji gunehên mezin e ku meriv dijûnan ji dê û bavê xwe bide." Eshaban gotin: Ya Resûlê Xwedê! Ma meriv dijûnan ji dê û bavê xwe re dide? Resûlê Xwedê jî got: "Belê,

---
1 Îsra, 17/23-24.

meriv dijûnan ji bavê yekî re dide, ew yeka jî dijûnan ji bavê meriv re dide; û meriv dijûnan ji dayika yekî re dide, ew yeka jî dijûnan ji dayika meriv re dide." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetek din de: "Bêguman ji mezintirînê gunehan e ku mirov lanetê li dê û bavê xwe bîne. "Hate gotin: Ya Resûlê Xwedê! Çawa mirov lanetê li dê û bavê xwe tîne? Resûlê Xwedê jî got: "Meriv dijûnan ji bavê yekî re dide, ew yeka jî dijûnan ji bavê meriv re dide; û meriv dijûnan ji dayika yekî re dide, ew yeka jî dijûnan ji dayika meriv re dide"

٣٤٠- عَنْ أَبِي مُحَمَّدٍ جُبَيْرِ بْنِ مُطْعِمٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (لَا يَدْخُلُ الْجَنَّةَ قَاطِعٌ) قَالَ سُفْيَانُ فِي رِوَايَتِهِ: يَعْنِي قَاطِعَ رَحِمٍ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

340- Ji Ebû Muhemmed Cubeyrê kurê Mut'im (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mirovê sileya rehmê qutkiriye naçe cennetê." Sufyan di rîwayeta xwe de gotiye: Yanî ew kesê sileya rehmê dibire. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٤١- عَنْ أَبِي عِيسَى الْمُغِيرَةِ بْنِ شُعْبَةَ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ حَرَّمَ عَلَيْكُمْ عُقُوقَ الأُمَّهَاتِ، وَمَنْعاً وَهَاتِ، وَوَأْدَ الْبَنَاتِ، وَكَرِهَ لَكُمْ قِيلَ وَقَالَ، وَكَثْرَةَ السُّؤَالِ، وَإِضَاعَةَ الْمَالِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

341- Ji Ebû Îsa Muxîreyê kurê Şu'be (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman Xweda te'ala li ser we ev yekana heram kiriye; bêemriya dê û bava, nedayina tiştê ku dayina wî wacib e û daxwaza tiştê ku heqê wî nîne, bin axkirina keçikan bi saxî. Paşbêj, pir pirs pirsin û zayîkirina mal jî ji we re mekruh kiriye." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ بِرِّ أَصْدِقَاءِ الأَبِ
## BI DOSTÊ EQREBAN RE QENCÎ

٣٤٢- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (أَبَرُّ الْبِرِّ أَنْ يَصِلَ الرَّجُلُ وُدَّ أَبِيهِ). رَوَاهُ مُسْلِم والترمذي.

342- Ji 'Ebdullahê Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Baştirînê başiyiyan ew e ku mirov başiyê bi dostê bavê

  

xwe bike.” *Muslim û Tirmizî riwayet kirine.*

٣٤٣-عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ دِينَارٍ عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَجُلاً مِنَ الأَعْرَابِ لَقِيَهُ بِطَرِيقِ مَكَّةَ، فَسَلَّمَ عَلَيْهِ عَبْدُ اللَّهِ وَحَمَلَهُ عَلَى حِمَارٍ كَانَ يَرْكَبُهُ، وَأَعْطَاهُ عِمَامَةً كَانَتْ عَلَى رَأْسِهِ، فَقَالَ ابْنُ دِينَارٍ: فَقُلْنَا لَهُ، أَصْلَحَكَ اللَّهُ، إِنَّهُمُ الأَعْرَابُ وَإِنَّهُمْ يَرْضَوْنَ بِالْيَسِيرِ، فَقَالَ عَبْدُ اللَّهِ: إِنَّ أَبَا هَذَا كَانَ وُدّاً لِعُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ، وَإِنِّي سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ أَبَرَّ الْبِرِّ صِلَةُ الْوَلَدِ أَهْلَ وُدِّ أَبِيهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ عَنْ ابْنِ دِينَارٍ عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّهُ كَانَ إِذَا خَرَجَ إِلَى مَكَّةَ كَانَ لَهُ حِمَارٌ يَتَرَوَّحُ عَلَيْهِ إِذَا مَلَّ رُكُوبَ الرَّاحِلَةِ، وَعِمَامَةٌ يَشُدُّ بِهَا رَأْسَهُ، فَبَيْنَا هُوَ يَوْمًا عَلَى ذَلِكَ الْحِمَارِ، إِذْ مَرَّ بِهِ أَعْرَابِيٌّ فَقَالَ: أَلَسْتَ ابْنَ فُلَانِ بْنِ فُلَانٍ؟ قَالَ: بَلَى، فَأَعْطَاهُ الْحِمَارَ، وَقَالَ: ارْكَبْ هَذَا، وَأَعْطَاهُ الْعِمَامَةَ، وَقَالَ: اشْدُدْ بِهَا رَأْسَكَ، فَقَالَ لَهُ بَعْضُ أَصْحَابِهِ: غَفَرَ اللَّهُ لَكَ، أَعْطَيْتَ هَذَا الأَعْرَابِيَّ حِمَاراً كُنْتَ تَرَوَّحُ عَلَيْهِ، وَعِمَامَةً كُنْتَ تَشُدُّ بِهَا رَأْسَكَ، فَقَالَ: إِنِّي سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ مِنْ أَبَرِّ الْبِرِّ صِلَةَ الرَّجُلِ أَهْلَ وُدِّ أَبِيهِ بَعْدَ أَنْ يُوَلِّيَ) وَإِنَّ أَبَاهُ كَانَ صَدِيقًا لِعُمَرَ ﷺ. رَوَاهُ مُسْلِم.

343- Ji ‘Ebdullahê kurê Dînar ji ‘Ebdullahê Îbnu ‘Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî Bedewî di rêya Mekkeyê de rastî wî hat. Vêca ‘Ebdullahê Îbnu ‘Umer selam li wî kir û hem jî ew li kerê xwe ya ku lê siwar bûbû siwar kir û hem şaşika li ser serê xwe jî pêşkeşî wî kir. ‘Ebdullahê kurê Dînar got: Li ser vê yekê me jê re got: Xwedê te islah bike. Ewana Bedewî ne. Lê Bedewî bi tiştê hindik jî razî dibin. Li ser vê gotinê ‘Ebdullahê Îbnu ‘Umer got: Bêguman bavê wî, dostê ‘Umerê kurê Xettab bû. Û min jî ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: “Baştirînê qenciyan, ew qenciya ye ku mirov li zar û zêçê dostê bavê xwe dike.”

Di rîwayetek din de, ji kurê Dînar ji Îbnu ‘Umer (r.): “Bêguman wextê ‘Ebdullahê Îbnu ‘Umer derdiket û wê biçûya Mekkeyê û ew ji siwarbûna

devê bikerixiya, kerek wî hebû li wê siwar dibû ew jê re rihettir dihat. Û hem şaşikek wî hebû pê serê xwe girê dida. Vêca ew rojekî li kerê xwe siwar bû, dît ku Bedewiyek ber wî re bihurî. 'Ebdullahê Îbnu 'Umer got: Ma qey tu ne ewê/filanê kurê ewê/filanê yi? Wî got: Belê. Li ser vê yekê 'Ebdullahê Îbnu 'Umer kerê xwe da wî û got: Tu lê siwar be. Şaşika xwe jî dayê û got: Tu vê jî li serê xwe bipêçe. Li ser vî karî hinek ji hevalên wî jê re gotin: Ey Îbnu 'Umer Xwedê te bixefirîne. Te kerê xwe yê ku tu lê siwar pêşkeşê vî Bedewiyî kir û te şaşika xwe ya ku te dida serê xwe jî da wî? Li ser vê gotinê, 'Ebdullahê Îbnu 'Umer got: Bêguman min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst ku digot: "Bêguman baştirînê qenciyan ew e ku mirov piştî mirina wî qenciyê bi dostê bavê xwe bike." Û bêguman bavê wî Bedewiyî dostê 'Umer bû (r.)." *Muslim rîwayet kiriye.*

٣٤٤- عَنْ أَبِي أُسَيْدٍ مَالِكِ بْنِ رَبِيعَةَ السَّاعِدِيِّ ﷺ قَالَ بَيْنَا نَحْنُ جلُوسٌ عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ إِذْ جَاءَهُ رَجُلٌ مِنْ بَنِي سَلَمَةَ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ هَلْ بَقِيَ مِنْ بِرِّ أَبَوَيَّ شَيْءٌ أَبَرُّهُمَا بِهِ بَعْدَ مَوْتِهِمَا؟ قَالَ: (نَعَم الصَّلَاةُ عَلَيْهِمَا، وَالإِسْتِغْفَارُ لَهُمَا، وَإِنْفَاذُ عَهْدِهِمَا مِنْ بَعْدِهِمَا، وَصِلَةُ الرَّحِمِ الَّتِي لَا تُوصَلُ إِلَّا بِهِمَا، وَإِكْرَامُ صَدِيقِهِمَا). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد.

344- Ji Ebû Useyd Malikê kurê Rebî'e es-Saîdî (r.), got: Di demekê de em digel Pêxemberê Xwedê (s.) rûniştî bûn, me dît mirovek ji qebîla Benî Seleme hat û got: Ya Resûlê Xwedê! Xêra dê û bavê min tiştek maye ku ez piştî mirina wan ji wê xêr û qenciyê ji wan re bikim? Got: "Belê. Dua-kirina ji bo wan, xwestina bexşandina gunehên wan, piştî wefata wan pêkanîna wesiyeta wan, qenciya li eqreba û mirovên wan û qedirgirtina dostê wan." *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

٣٤٥- عَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: مَا غِرْتُ عَلَى أَحَدٍ مِنْ نِسَاءِ النَّبِيِّ ﷺ مَا غِرْتُ عَلَى خَدِيجَةَ، وَمَا رَأَيْتُهَا، وَلَكِنْ كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يُكْثِرُ ذِكْرَهَا، وَرُبَّمَا ذَبَحَ الشَّاةَ ثُمَّ يُقَطِّعُهَا أَعْضَاءً ثُمَّ يَبْعَثُهَا فِي صَدَائِقِ خَدِيجَةَ، فَرُبَّمَا قُلْتُ لَهُ: كَأَنَّهُ لَمْ يَكُنْ فِي الدُّنْيَا إِمْرَأَةٌ إِلَّا خَدِيجَةُ، فَيَقُولُ: (إِنَّهَا كَانَتْ وَكَانَتْ، وَكَانَ لِي مِنْهَا وَلَدٌ) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: (وَإِنْ كَانَ لَيَذْبَحُ الشَّاةَ فَيُهْدِي فِي خَلَائِلِهَا مِنْهَا مَا يَسَعُهُنَّ مِنهَا) رَوَاهُ الْبُخَارِي.

وَفِي رِوَايَةٍ: (كَانَ إِذَا ذَبَحَ الشَّاةَ يَقُولُ: أَرْسِلُوا بِهَا إِلَى أَصْدِقَاءِ خَدِيجَةَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ لهما قَالَتْ: (إِسْتَأْذَنَتْ هَالَةُ بِنْتُ خُوَيْلِدٍ، أُخْتُ خَدِيجَةَ عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَعَرَفَ اسْتِئْذَانَ خَدِيجَةَ فَارْتَاحَ لِذلِكَ، فَقَالَ: اَللَّهُمَّ، هَالَةُ بِنْتُ خُوَيْلِدٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

345- Ji ‘Aîşe (r.), got: Bi qasî ku min dexesiya Xedîceyê dikir min ji tu ezwacê/jinên Pêxemberê Xwedê (s.) nedikir. Ya rastî min ew nedîtibû. Bes Pêxemberê Xwedê (s.) zêde behsa wê dikir û gelek caran jî pezek serjê dikir paşê jî hûr dikir û paşê jî Resûlê Xwedê (s.) ew qetên goşt ji dostê Xedîceyê re dişand. Gelek caran min jê re digot: Herwekî di dunyayê de ji bilî Xedîceyê jin nemane! Wî digot: “Ew wiha û wiha bû. Û hem Xweda ji wê zarok dane min.” *Muslim û Buxarî rîweyet kirine*

Di rîwayetek din de: Bêguman Resûlê Xwedê (s.) pezek serjê bikira têra dostê Xedîceyê goşt ji wan re dişand. *Buxarî rîweyet kiriye*

Di rîwayetek din de: Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) pezek serjê bikira digot: “Hûn goşt ji hevalên Xedîceyê jî re bişînin.” *Muslim rîweyet kiriye*

Di rîwayetek din de: ‘Aîşe got: Halet keça Xuweylid xuşka Xedîceyê ji Pêxemberê Xwedê (s.) îzna ziyaretê xwest. Ji ber ku dengê Haletê wekî dengê Xedîceyê bû Pêxemberê Xwedê (s.) hate heyecanê û got: “Ey Xwedayê min! Eva Haleta keça Xuweylîd e.” *Muslim û Buxarî rîweyet kirine*

٣٤٦- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ قَالَ: خَرَجْتُ مَعَ جَرِيرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ الْبَجَلِيِّ ﷺ فِي سَفَرٍ فَكَانَ يَخْدُمُنِي، فَقُلْتُ لَهُ: لَا تَفْعَلْ، فَقَالَ: إِنِّي قَدْ رَأَيْتُ الأَنْصَارَ تَصْنَعُ بِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ شَيْئًا آلَيْتُ عَلَى نَفْسِي أَنْ لَا أَصْحَبَ أَحَدًا مِنْهُمْ إِلَّا خَدَمْتُهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

346- Ji Enesê kurê Malik (r.), got: Ez digel Cerîrê kurê ‘Ebdullah el-Bucelî (r.) derketime seferekê, ewî xizmeta min dikir. Vêca min jê re got: Tu wisa neke. Ewî jî got: Bêguman min dît ku Ensaran çiqas xizmeteke mezin ji Pêxemberê Xwedê (s.) re dikirin. Vêca min jî sond xwariye ku ez wextê hevaltiyê bi yekî ji wan re bikim ezê jî bo wî xizmetê bikim.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## عبَابُ إِكْرَامِ أَهْلِ بَيْتِ رَسُولِ اللَّهِ
## ÎKRAMKIRINA MALBATA PÊXEMBER (S.)

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿إِنَّمَا يُرِيدُ اللَّهُ لِيُذْهِبَ عَنكُمُ الرِّجْسَ أَهْلَ الْبَيْتِ وَيُطَهِّرَكُمْ تَطْهِيراً﴾

"(Ey ehlê beytê!) Bêguman Xweda ('ezze we celle) divê çiqas tiştê qirêj û çiqas tiştê nebaş heye ji we bibe û we paqij û pak bike."[1]

﴿وَمَنْ يُعَظِّمْ شَعَائِرَ اللَّهِ فَإِنَّهَا مِنْ تَقْوَى الْقُلُوبِ﴾

"Her kî şe'airên[2] (dînê) Xwedê mezin (te'zîm) bike, bêşik ew ji teqwa qelban e."[3]

٣٤٧- عَنْ يَزِيدَ بْنِ حَيَّانَ قَالَ: انْطَلَقْتُ أَنَا وَحُصَيْنُ بْنُ سَبْرَةَ وَعَمْرُو بْنُ مُسْلِمٍ إِلَى زَيْدِ بْنِ أَرْقَمَ ﷺ فَلَمَّا جَلَسْنَا إِلَيْهِ قَالَ لَهُ حُصَيْنٌ: لَقَدْ لَقِيتَ يَا زَيْدُ خَيْراً كَثِيراً، رَأَيْتَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ وَسَمِعْتَ حَدِيثَهُ وَغَزَوْتَ مَعَهُ، وَصَلَّيْتَ خَلْفَهُ، لَقَدْ لَقِيتَ يَا زَيْدُ خَيْراً كَثِيراً، حَدِّثْنَا يَا زَيْدُ مَا سَمِعْتَ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ، قَالَ: يَا ابْنَ أَخِي وَاللَّهِ لَقَدْ كَبِرَتْ سِنِّي، وَقَدُمَ عَهْدِي، وَنَسِيتُ بَعْضَ الَّذِي كُنْتُ أَعِي مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَمَا حَدَّثْتُكُمْ فَاقْبَلُوا وَمَا لَا فَلَا تُكَلِّفُونِيهِ، ثُمَّ قَالَ: قَامَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَوْمًا فِينَا خَطِيباً بِمَاءٍ يُدْعَى خُمّاً بَيْنَ مَكَّةَ وَالْمَدِينَةِ، فَحَمِدَ اللَّهَ وَأَثْنَى عَلَيْهِ، وَوَعَظَ وَذَكَّرَ ثُمَّ قَالَ: (أَمَّا بَعْدُ، أَلَا أَيُّهَا النَّاسُ فَإِنَّمَا أَنَا بَشَرٌ يُوشِكُ أَنْ يَأْتِيَ رَسُولُ رَبِّي فَأُجِيبُ، وَأَنَا تَارِكٌ فِيكُمْ ثَقَلَيْنِ: أَوَّلُهُمَا كِتَابُ اللَّهِ، فِيهِ الْهُدَى وَالنُّورُ، فَخُذُوا بِكِتَابِ اللَّهِ وَاسْتَمْسِكُوا بِهِ) فَحَثَّ عَلَى كِتَابِ اللَّهِ، وَرَغَّبَ فِيهِ ثُمَّ قَالَ: (وَأَهْلُ بَيْتِي، أُذَكِّرُكُمُ اللَّهَ فِي أَهْلِ بَيْتِي) فَقَالَ لَهُ حُصَيْنٌ: وَمَنْ أَهْلُ بَيْتِهِ يَا زَيْدُ، أَلَيْسَ نِسَاؤُهُ مِنْ أَهْلِ بَيْتِهِ؟ قَالَ: نِسَاؤُهُ مِنْ أَهْلِ بَيْتِهِ، وَلَكِنْ أَهْلُ بَيْتِهِ مَنْ حُرِمَ الصَّدَقَةَ

1 Ehzab, 33/33.
2 Tişta ku Xwedê pîrozandiye.
3 Hec, 22/32.

  

بَعْدَهُ، قَالَ: وَمَنْ هُمْ؟ قَالَ: هُمْ آلُ عَلِيٍّ وَآلُ عَقِيلٍ وَآلُ جَعْفَرٍ وَآلُ عَبَّاسٍ، قَالَ: كُلُّ هَؤُلَاءِ حُرِمَ الصَّدَقَةَ؟ قَالَ: (نَعَمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ: (أَلَا وَإِنِّي تَارِكٌ فِيكُمْ ثَقَلَيْنِ: أَحَدُهُمَا كِتَابُ اللَّهِ، وَهُوَ حَبْلُ الْمَتِينُ، مَنِ اتَّبَعَهُ كَانَ عَلَى الْهُدَى، وَمَنْ تَرَكَهُ كَانَ عَلَى ضَلَالَةٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

347- Ji Yezîd kurê Heyyan, got: Ez û Husaynê kurê Sebre û ‘Emrê kurê Muslim em çûne cem Zeydê kurê Erqam (r.).Dema ku em li cem wî rûniştin, Husayn got: Ya Zeyd, bêguman tu gîhîştî xêra zehf, te Pêxemberê Xwedê (s.) dîtiye, te gotinên wî bihîstiye, tu bi wî re çûyî herbê, cîhadê û te pey li wî nimêj kiriye. Ya Zeyd, lê bêguman tu rastî xêrek mezin hatî. Vêca ya Zeyd tiştê ku te ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye ji me re jî bêje. Zeyd got: Ey kurên birê min, bêguman ez kal bûme û di nav re gelek zeman derbas bûye, hinek tiştên ku min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstibûn, ji bîra min çûne. Vêca ew tiştê ku ez ji we re bêjim hûn wî qebûl bikin û heçî tiştê ku ez ji we re nebêjim hûn li ser gotina wê zorê li min nekin. Paşê Zeyd got: Rojekê Pêxemberê Xwedê (s.) li ser avekî di neqeba Mekke û Medîneyê de, ku jê re digotin “Xum” rabû ji me re xutbe xwend. Piştî ku hemd û sena Xwedê kir û we‘z û nesîhet li me kir wiha got: “Piştî vê yekê. Gelî însanan! Bêguman ez jî wekî we beşer im û nêzîk e ku qasidê Rebbê min were cem min û ez jî îcabeta wî bikim. Ez du tiştê girîng ji we re dihêlim: Yek, Kitêba Xwedê ku tê de hîdayet û nûr heye. Hûn xwe bi wê bigrin û pê ‘emel bikin. Resûlê Xwedê li ser kitêba Xwedê terxîb û teşwîqa ummeta xwe kir û paşê jî got: (Ya duduyan jî) Ehlê mala min e. Ez derbarê ehlê mala xwe de, Xwedê tînim bîra we.” Vêca Husayn, ji Zeyd re got: Ya Zeyd, ehlê mala wî çi kes in? Ma qey ezwacê wî, ji ehlê mala wî nînin? Zeyd got: Jinên wî, ji ehlê mala wî ne. Bes malbata wî ew kesê ku piştî wî sedeqe (zikat) li ser wan heram bûye. Husayn got: Ewana kî ne? Zeyd got: Ew malbata ‘Elî, ‘Uqeyl, Ce‘fer û ‘Ebbas in. Husayn got: Zikat li van hemiyan heram e? Zeyd got: Belê. *Muslim rîwayet kiriye.*

Di rîwayetek din de: “Bila haya we jê heye ku ez ji we re du tiştên girîng dihêlim. Yek, Kitêba Xwedê ye. Ew tayekî/qetekî xurt e, kesê ku xwe pê bigire ewê li ser hîdayetê be û kesê ku terka wê bike ewê li ser delaletê be.”

٣٤٨- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ عَنْ أَبِي بَكْرٍ الصِّدِّيقِ ﷺ مَوْقُوفًا عَلَيْهِ أَنَّهُ قَالَ: ارْقُبُوا مُحَمَّداً

ﷺ فِي أَهْلِ بَيْتِهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

348- Ji Îbnu 'Umer (r.), ji Ebû Bekirê Siddîq (r.) bi mewqûfî hatiye rîwayetkirin û gotiye: "Hûn di derbarê ehlê mala Muhemmed (s.) de, emrê wî (s.) pêk bînin û qedrê wî (s.) bigrin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَوْقِيرِالْعُلَمَاءِ والْكِبَارِ وأَهْلِ الْفَضْلِ
## HURMETA 'ALIMAN Û QENCAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿قُلْ هَلْ يَسْتَوِى الَّذِينَ يَعْلَمُونَ وَالَّذِينَ لَا يَعْلَمُونَ إِنَّمَا يَتَذَكَّرُ أُولُو الأَلْبَابِ﴾

"Tu bêje, gelo yên zana û yên nezan wekî hev in? Bêguman her aqilmend difikirin."[1]

٣٤٩- عَنْ أَبِي مَسْعُودٍ عُقْبَةَ بنِ عَمرِو البَدْرِيِّ الأَنْصَارِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (يَؤُمُّ الْقَوْمَ أَقْرَؤُهُمْ لِكِتَابِ اللَّهِ، فَإِنْ كَانُوا فِي الْقِرَاءَةِ سَوَاءً فَأَعْلَمُهُمْ بِالسُّنَّةِ، فَإِنْ كَانُوا فِي السُّنَّةِ سَوَاءً فَأَقْدَمُهُمْ هِجْرَةً، فَإِنْ كَانُوا فِي الْهِجْرَةِ سَوَاءً فَأَقْدَمُهُمْ سِنّاً، وَلَا يَؤُمَّنَّ الرَّجُلُ الرَّجُلَ فِي سُلْطَانِهِ، وَلَا يَقْعُدْ فِي بَيْتِهِ عَلَى تَكْرِمَتِهِ إِلَّا بِإِذْنِهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ:(فَأَقْدَمُهُمْ سِلْماً بَدَلَ سِناً).

وَفِي رِوَايَةٍ: (يَؤُمُّ الْقَوْمَ أَقْرَؤُهُمْ لِكِتَابِ اللَّهِ وَأَقْدَمُهُمْ قِرَاءَةً، فَإِنْ كَانَتْ قِرَاءَتُهُم سَوَاءً فَلْيَؤُمُّهُمْ أَقْدَمُهُمْ هِجْرَةً، فَإِنْ كَانُوا فِي الهِجْرَةِ سَوَاءً فَلْيَؤُمُّهُمْ أَكْبَرُهُمْ سناً).

349- Ji Ebû Mes'ûd Uqbe kurê 'Emrê Bedrî el-Ensarî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ji civatê re bila yê ku çêtir Qur'anê dixwîne nimêjê bide kirin (yanî bila ew bibe îmam). Heger di xwendinê de wekî hevdu bin, kê sunnetê zanatir e; eger di sunnetê de jî wekî hev bin kê pêşiyê hîcret kiriye; eger di hîcrete de jî wekî hev bin, kî mezintir be bila ew bibe îmam. Bila tu kes di mêvaniyê de bê îzna mazûvan nebe îmamê wî û bila bê îzna wî li ser ciyê wî jî rûnene." *Muslim rîwayet kiriye.*

1 Zumer, 39/9.

  

Di rîwayetekê de: Di ciyê "kî mezintir be" de "kî pêşiyê misilman bûye."

Di rîwayetekê de jî: "Ji civatê re yê ku çêtir û piştre Kitêba Xwedê xwendiye bila ew nimêjê bide kirin (yanî bila ew bibe îmam). Heger xwendina wan wekî hevdu be, yê ku pêşiyê hîcret kiriye; eger di hîcretê de jî wekî hev bin, kî mezintir be bila ew bibe îmam."

٣٥٠- وَعَنْهُ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَمْسَحُ مَنَاكِبَنَا فِي الصَّلَاةِ وَيَقُولُ: (اسْتَوُوا وَلَا تَخْتَلِفُوا فَتَخْتَلِفَ قُلُوبُكُمْ، لِيَلِنِي مِنْكُمْ أُولُو الأَحْلَامِ وَالنُّهَى، ثُمَّ الَّذِينَ يَلُونَهُمْ، ثُمَّ الَّذِينَ يَلُونَهُمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

350- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) di nimêjê de destê xwe dida ser milê me û digot: Hûn xwe serast bikin û tevlihevî çênekin bêweku qelbê we jî tevlihev bibe. Bila ji we yê gihîştîtir li pey min bisekinin, paşê jî yê ku jî wan kêmtir in, paşê ji bi vê rêzê." *Muslim rîwayet kiriye.*

٣٥١- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (لِيَلِنِي مِنْكُمْ أُولُو الأَحْلَامِ وَالنُّهَى، ثُمَّ الَّذِينَ يَلُونَهُمْ -ثَلَاثًا- وَإِيَّاكُمْ وَهَيْشَاتِ الأَسْوَاقِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

351- Ji 'Ebdullahê kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "bila di nimêjê de bila ji we yê gihîştîtir pêy min bisekinin, paşê jî yê ku ji wan kêmtir in. (Resûlê Xwedê ev hevoka sê [3] caran dubare kir). Hûn xwe ji bêrêziya di sûkan de biparêzin." *Muslim riwayet kiriye.*

٣٥٢- وَعَنْ أَبِي يَحْيَي، وَقِيلَ: أَبِي مُحَمَّدٍ سَهْلِ بْنِ أَبِي حَثْمَةَ الأَنْصَارِيِّ ﷺ قَالَ: انْطَلَقَ عَبْدُ اللَّهِ بْنُ سَهْلٍ وَمُحَيِّصَةُ بْنُ مَسْعُودٍ إِلَى خَيْبَرَ، وهِيَ يَوْمَئِذٍ صُلْحٌ، فَتَفرَّقَا، فَأَتَى مُحَيِّصَةُ إِلَى عَبْدِ اللَّهِ بْنِ سَهْلٍ وَهُوَ يَتَشَحَّطُ فِي دَمِهِ قَتِيلاً فَدَفَنَهُ، ثُمَّ قَدِمَ الْمَدِينَةَ فَانْطَلَقَ عَبْدُ الرَّحْمنِ بْنُ سَهْلٍ وَمُحَيِّصَةُ وَحُوَيِّصَةُ ابْنَا مَسْعُودٍ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَذَهَبَ عَبْدُ الرَّحْمنِ يَتَكَلَّمُ فَقَالَ: (كَبِّرْ كَبِّرْ) وَهُوَ أَحْدَثُ الْقَوْمِ فَسَكَتَ فَتَكَلَّمَا فَقَالَ: (أَتَحلِفُونَ وَتَسْتَحِقُّونَ قَاتِلَكُمْ) وَذَكَرَ تَمَامَ الْحدِيثِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

352- Ji Ebû Yehya (yan jî Ebû Muhemmed) Sehlê kurê Ebû Hesme el-

Ensarî (r.), got: 'Ebdullahê kurê Sehl û Muheyyiseyê kurê Mes'ûd çûne Xeyberê –hingê Xeyber jî di aşîtiyê de bû-. Ew her du ji bona karê xwe pêk bînin ji hev veqetiyan. Nîhayet Muheyyiseyê kurê Mes'ûd hate cem 'Ebdullahê kurê Sehl dît ku ew di nav xûna xwe de kuştiye. Ew defin kir û vegeriya Medîneyê. Li ser vê yekê 'Ebdurrehmanê kurê Sehl, Muheyyise û Huweyyiseyê kurên Mes'ûd hatin cem Pêxemberê Xwedê (s.). Vêca 'Ebdurrehman, yê herî piçûkê qewmê bû jî dest bi axaftinê kir, lê Pêxemberê Xwedê (s.) jê re got: Riayetî heqê mezinan bike (yanî axaftin heqê yê mezintir e). Riayetî heqê mezinan bike. Li ser vê yekê ew rawestiya, wanê din axaftin. Resûlê Xwedê jî got: Hûn sond dixwin da ku hûn de'wa xwe bi destê xwe bixin." Ebû Yehya temamê hedîsê zikr kir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٥٣- عَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يَجْمَعُ بَيْنَ الرَّجُلَيْنِ مِنْ قَتْلَى أُحُدٍ: ثُمَّ يَقُولُ: (أَيُّهُمَا أَكْثَرُ أَخْذاً لِلْقُرْآنِ؟) فَإِذَا أُشِيرَ لَهُ إِلَى أَحَدِهِمَا قَدَّمَهُ فِي اللَّحْدِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

353- Ji Cabir (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji şehîdê Ûhûdê du (2) mirov didan ba hev û paşê jî digot: "Ji van her duyan kîjanî zêdetir Qur'an dizanî?" Wextê îşaret bi alî yek ji wan ve bihata kirin Resûlê Xwedê ew berê dikire gorê." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٣٥٤- عَنْ عَبْدَ اللَّهِ بْنَ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (أَرَانِي فِي الْمَنَامِ أَتَسَوَّكُ بِسِوَاكٍ فَجاءَنِي رَجُلَانِ أَحَدُهُمَا أَكْبَرُ مِنَ الآخَرِ، فَنَاوَلْتُ السِّوَاكَ الأَصْغَرَ مِنْهُمَا فَقِيلَ لِي: كَبِّرْ، فَدَفَعْتُهُ إِلَى الأَكْبَرِ مِنْهُمَا). رَوَاهُ مُسْلِمْ مسْنَداً، وَرَوَاهُ الْبُخَارِي تَعْلِيقاً.

354- Ji 'Ebdullahê Îbnu 'Umer (r.), hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Min di xewnê de didît ku min bi mîswakê diranê xwe difirikand û di wê demê de du mirov hatin cem min. Yek ji yê din mezintir bû. Vêca min mîswak dirêji ba yê piçûk ve kir. Di wê demê de ji min re hate gotin: Tu mîswakê bide yê mezintir. Li ser vê yekê min jî mîswak pêşkeşî yê mezintir kir." *Muslim musneden û Buxarî te'lîqen rîwayet kiriye.*

٣٥٥- عَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ مِنْ إِجْلَالِ اللَّهِ إِكْرَامَ ذِي الشَّيْبَةِ الْمُسْلِمِ، وَحَامِلِ الْقُرْآنِ غَيْرِ الْغَالِي فِيهِ وَالْجَافِي عَنْهُ، وَإِكْرَامَ ذِي

السُّلْطَانِ الْمُقْسِطِ). حَدِيثٌ حَسَنٌ رَوَاهُ أَبُو دَاوود.

355- Ji Ebû Mûsa Eş‘erî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Bêguman qedirgirtina rûspiyê misilman û qedirgirtina hamil û hafizê Qur‘anê yê ku ne zêde diçe û ne jî jê dûr dikeve û hem qedirgirtina sultanê (îmamê) ‘adil, ji te‘zîmkirina Xwedê ye.” *Ebû Dawûd rîwayet kiriye. Dereca wê hesen e.*

٣٥٦- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (لَيْسَ مِنَّا مَنْ لَمْ يَرْحَمْ صَغِيرَنَا وَيَعْرِفْ شَرَفَ كَبِيرِنَا) حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ التِّرْمِذِي: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيح.

وفِي رِوَايَة أَبِي دَاوودَ (حَقَّ كَبِيرِنَا)

356- Ji ‘Emrê kurê Şu‘eyb, ji bavê wî, ji kalikê wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê ku rehmê li piçûkê me neke û qedr û şerefa mezinê me nezane, ew ne ji me ye.” *Hedîs sehîh e. Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine. Tirmizî gotiye dereca wê hesen e û sehîh e.*

Di rîwayeta Ebû Dawûd de: “...heqê mezinê me...” ye.

٣٥٧- عَنْ مَيْمُونِ بْنِ أَبِي شَبِيبٍ رَحِمَهُ اللَّهُ عَنْهُ أَنَّ عَائِشَةَ ﵂ مَرَّ بِهَا سَائِلٌ فَأَعْطَتْهُ كِسْرَةً، وَمَرَّ بِهَا رَجُلٌ عَلَيْهِ ثِيَابٌ وَهَيْئَةٌ فَأَقْعَدَتْهُ فَأَكَلَ، فَقِيلَ لَهَا فِي ذَلِكَ، فَقَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَنْزِلُوا النَّاسَ مَنَازِلَهُمْ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود.

لَكِن قَالَ: مَيْمُون لَمْ يدْرِك عَائِشَةَ، وَقَدْ ذَكَرَهُ مُسْلِم فِي أَوَّل صَحِيحِهِ تَعْلِيقاً فَقَالَ: وَذَكَرَ عَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: (أَمَرَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ أَنْ ننْزِلَ النَّاسَ مَنَازِلهمْ).

357- Ji Meymûnê kurê Ebû Şeybe (r.), hatiye rîwayetkirin ku di ber ‘Aîşeyê re (r.) mirovek parsek borî, wê jî qetek nan da wî. Mirovekî din jî derbas bû lêbelê kincê wî mirovî sererast bû. Vêca wê, ew mirova da rûniştandin û wî xwarin xwar. Sedema vê yekê hate pirsîn. Ewê jî got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn bi herkesî re li gor dereca wî mu‘amelê bikin.” Ebû Dawûd rîwayet kiriye. Lêbelê Ebû Dawûd gotiye: Meymûn negihîştiye Hz. ‘Aîşe. Muslim ev hedîs di serê Sehîha xwe de te‘lîqen zikr kiriye û gotiye: Ji ‘Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku wê wiha gotiye: Pêxemberê Xwedê (s.) emrê me kiriye ku bi li em bi însanan li gor dereca wan mu‘amelê bi wan re bikin.

٣٥٨- عَنِ ابْنَ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: قَدِمَ عُيَيْنَةُ بْنُ حِصْنٍ فَنَزَلَ عَلَى ابْنِ أَخِيهِ الْحُرِّ بْنِ قَيْسٍ، وَكَانَ مِنَ النَّفَرِ الَّذِينَ يُدْنِيهِمْ عُمَرُ وَكَانَ الْقُرَّاءُ أَصْحَابَ مَجْلِسِ عُمَرَ وَمُشَاوَرَتِهِ كُهُولاً كَانُوا أَوْ شُبَّاناً، فَقَالَ عُيَيْنَةُ لابْنِ أَخِيهِ: يَا ابْنَ أَخِي هَلْ لَكَ وَجْهٌ عِنْدَ هَذَا الأَمِيرِ فَتَسْتَأْذِنَ لِي عَلَيْهِ، قَالَ سَأَسْتَأْذِنُ لَكَ عَلَيْهِ قَالَ ابْنُ عَبَّاسٍ فَاسْتَأْذَنَ لِعُيَيْنَةَ فَلَمَّا دَخَلَ قَالَ: يَا ابْنَ الْخَطَّابِ، وَاللَّهِ مَا تُعْطِينَا الْجَزْلَ وَمَا تَحْكُمُ بَيْنَنَا بِالْعَدْلِ، فَغَضِبَ عُمَرُ حَتَّى هَمَّ أَنْ يُوقِعَ بِهِ، فَقَالَ الْحُرُّ: يَا أَمِيرَ الْمُؤْمِنِينَ، إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى قَالَ لِنَبِيِّهِ ﷺ: ﴿خُذِ الْعَفْوَ وَأْمُرْ بِالْعُرْفِ وَأَعْرِضْ عَنِ الْجَاهِلِينَ﴾ (الأعراف ١٩٩) وَإِنَّ هَذَا مِنَ الْجَاهِلِينَ، فَوَاللَّهِ مَا جَاوَزَهَا عُمَرُ ﷺ حِينَ تَلاَهَا عَلَيْهِ، وَكَانَ وَقَّافًا عِنْدَ كِتَابِ اللَّهِ تَعَالَى. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

358- Ji kurê ‘Ebbas (r.), got: Rojekê ‘Uyeyneyê kurê Hisn hate Medîneyê li mala kurê birayê xwe Hurrê kurê Qeys peya bû. Ew jî endamê komîteya şêwirgeha Hz. ‘Umer bû. Çi kal û çi jî xortê ku endamê civat û şêwirgeha Hz. ‘Umer bû, xwendevan û zana bû. Vêca ‘Uyeyne ji kurê birayê xwe re got: Ey birazî, li cem vî mîrî (yanî Îmamê ‘Umer) rûyê te heye ku tu ji bona min îznê jê bixwazî? Biraziyê wî jî got. Ezê ji te re ji wî îznê bixwazim. Îbn ‘Ebbas dibêje: Vêca Îmamê ‘Umer (r.) îzna ‘Uyeyne da. Wextê ‘Uyeyne hate cem Îmamê ‘Umer, jê re got: Ya kurê Xettab, tu wellahî li me nanêrî û di neqeba me de bi ‘edaletê hukum nakî. Li ser vê yekê Îmamê ‘Umer (r.) hêrs bû heta mebest kir ku wî ceza bike. Li ser vê yekê Hurrê kurê Qeys got: Ya mîrê misilmana, bêguman Xweda (‘ezze we celle, ji pêxemberê xwe re wiha gotiye: “Tu bexşê bigire û başiyê emir bike û tu xwe ji cahilan dûr bigire.” Bêguman eva jî ji nezana ye. Wextê Hurr ev ayet xwend, wellahî ‘Umer (r.) jê derbas nebû û pêşberê kitêba Xwedê de rawestayî bû. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٣٥٩- عَنْ أَبِي سعيدٍ سَمُرَةُ بْنُ جُنْدُبٍ ﷺ قَالَ: لَقَدْ كُنْتُ عَلَى عَهْدِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ غُلَاماً فَكُنْتُ أَحْفَظُ عَنْهُ فَمَا يَمْنَعُنِي مِنَ الْقَوْلِ إِلَّا أَنَّ هَهُنَا رِجَالاً هُمْ أَسَنُّ مِنِّي). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

359- Ji Ebû Se‘îd Semure kurê Cundub (r.), hatiye rîwayetkirin ku wiha gotiye: Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) li heyatê bû ez zarok bûm. Tiştê ku min ji Pêxemberê Xwedê (s.) ji ber kirine hene. Lêbelê tiştê ku men‘a min

  

ji gotina wan dike, (ew e ku) di vê derê de mirovên ji min mezintir hene.
*Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٣٦٠- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: مَا أَكْرَمَ شَابٌّ شَيْخاً لِسِنِّهِ إِلَّا قَيَّضَ اللَّهُ لَهُ مَنْ يُكْرِمُهُ عِنْدَ سِنِّهِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: غَرِيب.

360- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê xortek ji bo xatirê temenê/'umrê wî qedrê kala bigire, Xwedayê te'ala jî di kalbûna wî de yê ku qedrê wî bigire amade dike." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye ev hedîs xerîb e.*

## بَابُ زِيَارَةُ أَهْلِ الْخَيْرِ
## SERLÊDANA MIROVÊN QENC

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَإِذْ قَالَ مُوسَى لِفَتَاهُ لَا أَبْرَحُ حَتَّى أَبْلُغَ مَجْمَعَ الْبَحْرَيْنِ أَوْ أَمْضِيَ حُقُبًا.... إِلَى قَوْلِهِ تَعَالَى... قَالَ لَهُ مُوسَى هَلْ أَتَّبِعُكَ عَلَى أَنْ تُعَلِّمَنِ مِمَّا عُلِّمْتَ رُشْدًا﴾

*"Û bîne bîra xwe dema Mûsa ji hevalê xwe re got: Ez nasekinim, dê biçim heta ku ez bigihêjime ciyê yekbûna her du behra yan jî ezê bi salan bimejim. Wextê her du gihîştin ciyê yekbûna her du behran, masiyê xwe jibîr kirin. Paşê masî di behrê de rêya xwe girt û rêyek hişk û zûwa girt. Paşê wextê her du ji wê rêyê borîn, Mûsa ji hevalê xwe re got: Kanê taştêya me bîne, bêguman di vê rêwêtiya me da em westiyan. Hevalê wî got: Ne te dît! Wextê em gihîştine cem kevir min masî li wê derê jibîr kir. Yê ku bi min da ye bîrkirinê ku ez bi bîrbînim, ancax şeytan e û ewî masiyî jî bi awakî 'ecêbmayî rêya xwe di behrê de girt; rêyeke hişk û zûwa. Mûsa got: A ku me dixwest, ji xwe ev e. Vêca Mûsa û hevalê xwe di rêya ku ew tê de hatibûn de zivirîn. Her duyan li wê derê 'ebdek ji 'îbadên me dîtin ku me ji ba xwe ve rehmet dayê û 'ilm pê daye zanîn. Mûsa ji wî re got: Ew 'ilmê xêr ku tu pê hatî hînkirin, ez dikarim bibim tabi'ê te ku tu min jî hînî wê bikî?"*[1]

﴿وَاصْبِرْ نَفْسَكَ مَعَ الَّذِينَ يَدْعُونَ رَبَّهُمْ بِالْغَدَاةِ وَالْعَشِيِّ يُرِيدُونَ وَجْهَهُ﴾

1 Kehf, 18/60-66.

"(Ya Muhemmed!) Tu nefsa xwe hepis bike digel wan kesên ku di sibeh û êvaran de gazî Rebbê xwe dikin û daxwaza razîbûna wî dikin."[1]

٣٦١- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ أَبُو بَكْرٍ ﷺ بَعْدَ وَفَاةِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ لِعُمَرَ ﷺ انْطَلِقْ بِنَا إِلَى أُمِّ أَيْمَنَ ﷺ نَزُورُهَا كَمَا كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَزُورُهَا، فَلَمَّا انْتَهَيْنَا إِلَيْهَا بَكَتْ، فَقَالَا لَهَا: مَا يُبْكِيكِ، أَمَا تَعْلَمِينَ أَنَّ مَا عِنْدَ اللَّهِ خَيْرٌ لِرَسُولِهِ ﷺ فَقَالَتْ: إِنِّي لَا أَبْكِي أَنِّي لا أَعْلَمُ أَنَّ مَا عِنْدَ اللَّهِ خَيْرٌ لِرَسُولِهِ ﷺ وَلَكِنْ أَبْكِي أَنَّ الْوَحْيَ قَدِ انْقَطَعَ مِنَ السَّمَاءِ، فَهَيَّجَتْهُمَا عَلَى الْبُكَاءِ، فَجَعَلَا يَبْكِيَانِ مَعَهَا. رَوَاهُ مُسْلِم.

361- Ji Enes (r.), got: Ebû Bekirê Siddîq (r.), piştî wefata Pêxemberê Xwedê (s.) ji Hz. 'Umer (r.) re got: Tu rabe. Em herin Ummu Eymenê ziyaret bikin wekî ku Pêxemberê Xwedê (r.) ew ziyaret dikir. Wextê em çûne ziyareta wê û wê em dîtin dest bi girî kir. Vêca Ebû Bekir û 'Umer (r.) ji wê re gotin: Ji bo çi tu digrî? Ma tu nizanî tişta ku li cem Xwedê te'ala ye ji Pêxemberê wî re xêrtir e? Ewê got: Bêguman ez ne ji ber wî qasî digirîm. Belê ez dizanim tiştê ku li cem Xwedê (c.c.) ye ji bo Resûlê Xwedê (s.) xêrtir e. Lêbelê ez digrîm bi sedem ku ji asîmanan wehî qut bû. Ummu Eymenê ew her du jî anîn heyecanê û her duyan jî bi Ummu Eymenê re dest bi girî kirin. *Muslim rîwayet kiriye.*

٣٦٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ (أَنَّ رَجُلاً زَارَ أَخاً لَهُ فِي قَرْيَةٍ أُخْرَى، فَأَرْصَدَ اللَّهُ لَهُ عَلَى مَدْرَجَتِهِ مَلَكاً، فَلَمَّا أَتَى عَلَيْهِ قَالَ: أَيْنَ تُرِيدُ؟ قَالَ: أُرِيدُ أَخاً لِي فِي هَذِهِ الْقَرْيَةِ، قَالَ: هَلْ لَكَ عَلَيْهِ مِنْ نِعْمَةٍ تَرُبُّهَا عَلَيْهِ؟ قَالَ: لَا، غَيْرَ أَنِّي أَحْبَبْتُهُ فِي اللَّهِ عَزَّ وَجَلَّ، قَالَ فَإِنِّي رَسُولُ اللَّهِ إِلَيْكَ بِأَنَّ اللَّهَ قَدْ أَحَبَّكَ كَمَا أَحْبَبْتَهُ فِيهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

362- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.): "Bêguman mirovek ji bo ziyareta birayê xwe yê di gundekî din derkete rê. Vêca Xwedê te'ala li ser rêya wî mirovî melekek peywirdar kir. Wextê ew mirov rastî wî melekî hat, milyaket got: Tuyê kû ve biçî? Ewî jî got: Ez dixwazim herime ziyareta birayê xwe yê li vî gundî. Milyaket got: Gelo te hêviya qenciyekê ji wî

1 Kehf, 18/28.

mirovî heye, tu dixwazi ku tu wê bidî domandin? Wî got: Naxêr. Lêbelê, min ji bo Xwedê ji wî hezkiriye. Wî melekî got: Bêguman ez qasidê Xwedê me ji bo te hatime şandin. Tu bizanibe ku Xwedê (c.c.) jî, ji te hezkiriye çawa te ji bo Xwedê ji wî mirovî hezkiriye." *Muslim rîwayet kiriye.*

٣٦٣- عَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (مَنْ عَادَ مَرِيضاً أَوْ زَارَ أَخاً لَهُ فِي اللَّهِ نَادَاهُ مُنَادٍ: طِبْتَ وَطَابَ مَمْشَاكَ، وَتَبَوَّأْتَ مِنَ الْجَنَّةِ مَنْزِلاً). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

363- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ew kesê ku here serdana nexweşekî û yan jî ji bo Xwedê ziyareta birayekî xwe bike, melekekî gazîker, wiha gazî wî dike: Tu kêfxweş be! Ev rêveçûna te pir rind e û te di cennetê de ciyê xwe amade kir." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye dereca wê hesen e.*

٣٦٤- عَنْ أَبِي مُوسَى الأَشعرِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَثَلُ الْجَلِيسِ الصَّالِحِ وَالسَّوْءِ كَحَامِلِ الْمِسْكِ وَنَافِخِ الْكِيرِ، فَحَامِلُ الْمِسْكِ إِمَّا أَنْ يُحْذِيَكَ، وَإِمَّا أَنْ تَبْتَاعَ مِنْهُ، وَإِمَّا أَنْ تَجِدَ مِنْهُ رِيحًا طَيِّبَةً، وَنَافِخُ الْكِيرِ إِمَّا أَنْ يُحْرِقَ ثِيَابَكَ وَإِمَّا أَنْ تَجِدَ رِيحاً خَبِيثَةً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

364- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mesela rûniştina (yanî hevaltiya) digel mirovê baş û yê nebaş wekî firoşkarê miskê û pifkiriyê nepaxê ye. Firoşkarê miskê gava ku tu çûyî bal, yan wê hinek bêhna xweş bide te û yan tuyê ji wî hinekî bikirî û yan jî tuyê bêhn eke xweş bêhnbikî. Lêbelê pifkiriyê nepaxê/kureyê gava tu çûyî bal yan wê cilê te bişewitîne û yan jî tu ji wê bêhneke nexweş bêhn bikî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٦٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: تُنْكَحُ الْمَرْأَةُ لأَرْبَعٍ: لِمَالِهَا، وَلِحَسَبِهَا، وَلِجَمَالِهَا، وَلِدِينِهَا، فَأَظْفَرْ بِذَاتِ الدِّينِ تَرِبَتْ يَدَاكَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

365- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Jinik ji bo çar xesletan tê mahr kirin: Yan ji bo malê wê, yan ji bo eslê wê, yan ji bo rindayiya wê û yan jî ji bo oldariya wê. Lêbelê tu ya ku oldar e hilbijêre ku tu bextewar bibî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٦٦- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ لِجِبْرِيلَ: (مَا يَمْنَعُكَ اَنْ تَزُورَنَا اَكْثَرَ مِمَّا

تَزُورُنَا؟) فَنَزَلَتْ: (وَمَا نَتَنَزَّلُ إِلَّا بِأَمْرِ رَبِّكَ لَهُ مَا بَيْنَ أَيْدِينَا وَمَا خَلْفَنَا وَمَا بَيْنَ ذلِكَ)

-مَرْيَمَ ٦٤-. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

366- Ji kurê ‘Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji Cebraîl re (s.) got: “Çi ye nahêle ku tu zêdetir ziyareta me bikî? Li ser vê yekê ev ayet nazil bû. “Em ancax bi emrê Rebbê te dadikevin. Pêşiya me û paşiya me û tiştê neqeba van de her ji Xwedê re ne.” *Buxarî riwayet kiriye.*

٣٦٧- عَنْ أَبِى سَعِيدِ الْخُدْرِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَا تُصَاحِبْ إِلَّا مُؤْمِناً، وَلَا يَأْكُلْ طَعَامَكَ إِلَّا تَقِيٌّ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي.

367- Ji Ebû Se‘îdê Xudrî (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Tu bes bibe hevalê mu’min û bila ji xeynê mirovên mutteqî jî nanê te nexwin.” *Ebû Dawûd û Tirmizî riwayet kirine.*

٣٦٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (اَلرَّجُلُ عَلَى دِينِ خَلِيلِهِ، فَلْيَنْظُرْ اَحَدُكُمْ مَنْ يُخَالِلُ) رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ التِّرْمِذِي: حَدِيثٌ حَسَن.

368- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin: Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Mirov li ser dînê dostê xwe ye. Vêca bila hûn binêrin ka hûn bi kî re hevaltiyê dikin.” *Ebû Dawûd û Tirmizî bi senedeke sehîh rîwayet kirine û Tirmizî ji gotiye ev hedîs hesen e.*

٣٦٩- عَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (اَلْمَرْءُ مَعَ مَنْ أَحَبَّ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِى رِوَايَةٍ قَالَ: قِيلَ لِلنَّبِيِّ ﷺ: اَلرَّجُلُ يُحِبُّ الْقَوْمَ وَلَمَّا يَلْحَقْ بِهِمْ قَالَ: (اَلْمَرْءُ مَعَ مَنْ أَحَبَّ)

369- Ji Ebû Mûsayê Eş‘erî (r.) hatiye rîwayetkirin: Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Mirov, digel kezkiroxê xwe ye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetek din de: Got: Ji Pêxemberê Xwedê (s.) re hate gotin: Ya Resûlê Xwedê! Mirovek ji qewmekî hez bike, lêbelê negihêje wan, gotina te di derbarê wî de çi ye? Resûlê Xwedê (s.) got: “Mirov, digel kezkiroxê xwe ye.”

٣٧٠- عَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ أَعْرَابِيّاً قَالَ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ مَتَى السَّاعَةُ؟ قَالَ له رَسُولُ الله ﷺ: (مَا أَعْدَدْتَ لَهَا؟) قَالَ: حبَّ اللَّهِ وَرَسُولِهِ، قَالَ: (أَنْتَ مَعَ مَنْ أَحْبَبْتَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُمَا: مَا أَعْدَدْتُ لَهَا مِنْ كَثِيرِ صَلَاةٍ وَلَا صَوْمٍ وَلَا صَدَقَةٍ وَلَكِنِّي أُحِبُّ اللَّهَ وَرَسُولَهُ.

370- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî Bedewî ji Pêxemberê Xwedê (s.) re got: Qiyamet kîngê ye? Resûlê Xwedê (s.) jê re got: "Te ji bo qiyametê çi amade kiriye? Wî got: "Hezjêkirina Xwedê û Resûlê wî. Resûlê Xwedê jî got: "Tu, digel wî yê ku te jê hezkiriye yî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetek din a Muslim û Buxarî de wiha ye: "Min ji qiyametê re zehf nimêj û rojî û sedeqe amade nekiriye, lêbelê ez ji Xwedê û Resûlê wî hez dikim."

٣٧١- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ كَيْفَ تَقُولُ فِي رَجُلٍ أَحَبَّ قَوْمًا وَلَمْ يَلْحَقْ بِهِمْ؟ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (الْمَرْءُ مَعَ مَنْ أَحَبَّ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

371- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Mirovek hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û got: Ya Resûlê Xwedê! Tu di derbarê wî mirovê ku ji qewmekî hez bike, lêbelê negihêje wan çi dibêjî? Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Mirov, digel kezkiroxê xwe ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٧٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (اَلنَّاسُ مَعَادِنُ كَمَعَادِنِ الذَّهَبِ وَالْفِضَّةِ، خِيَارُهُمْ فِي الْجَاهِلِيَّةِ خِيَارُهُمْ فِي الإِسْلَامِ إِذَا فَقُهُوا، وَالأَرْوَاحُ جُنُودٌ مُجَنَّدَةٌ، فَمَا تَعَارَفَ مِنْهَا ائْتَلَفَ، وَمَا تَنَاكَرَ مِنْهَا اخْتَلَفَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

وروى الْبُخَارِي قَوْله: (الأَرْوَاحُ...) الخ مِنْ رِوَايَةِ عَائِشَةَ.

372- Ji Ebû Hureyre (r.) Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Însan jî, wekî madenê zêr û zîv, maden in. Qenctirînê wan di dewra Cahiliyetê de, di dewra Îslamiyetê de jî qenctirînê wan in, gava ku zanabin. Ruhê însanan, wekî leşkerî ne. Vêca yê ku hevdu nas kirine digihêjine hev, û yê ku hevdu nas nekirine nagihêjine hev." *Muslim rîwayet kiriye.*

Buxarî ji gotina Pêxemberê Xwedê (s.) ji "el-Erwah"ê, heya dawiyê ji 'Aîşe (r.) rîwayet kiriye.

٣٧٣- عَنْ أُسَيْرِ بْنِ عَمْرٍو، وَيُقَال: اِبْنُ جابِر، قَالَ: كَانَ عُمَرُ بْنُ الْخَطَّابِ ﷺ إِذَا أَتَى عَلَيْهِ أَمْدَادُ أَهْلِ الْيَمَنِ سَأَلَهُمْ: أَفِيكُمْ أُوَيْسُ بْنُ عَامِرٍ؟ حَتَّى أَتَى عَلَى أُوَيْسٍ فَقَالَ: أَنْتَ أُوَيْسُ بْنُ عَامِرٍ؟ قَالَ: نَعَمْ، قَالَ: مِنْ مُرَادٍ ثُمَّ مِنْ قَرَنٍ؟ قَالَ: نَعَمْ، قَالَ، فَكَانَ بِكَ بَرَصٌ فَبَرَأْتَ مِنْهُ إِلَّا مَوْضِعَ دِرْهَمٍ؟ قَالَ: نَعَمْ، قَالَ: لَكَ وَالِدَةٌ؟ قَالَ: نَعَمْ، قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (يَأْتِي عَلَيْكُمْ أُوَيْسُ بْنُ عَامِرٍ مَعَ أَمْدَادِ أَهْلِ الْيَمَنِ مِنْ مُرَادٍ ثُمَّ مِنْ قَرَنٍ كَانَ بِهِ بَرَصٌ فَبَرَأَ مِنْهُ إِلَّا مَوْضِعَ دِرْهَمٍ لَهُ وَالِدَةٌ هُوَ بِهَا بَرٌّ لَوْ أَقْسَمَ عَلَى اللَّهِ لأَبَرَّهُ فَإِنِ اسْتَطَعْتَ أَنْ يَسْتَغْفِرَ لَكَ فَافْعَلْ) فَاسْتَغْفِرْ لِي فَاسْتَغْفَرَ لَهُ، فَقَالَ لَهُ عُمَرُ: أَيْنَ تُرِيدُ؟ قَالَ: الْكُوفَةَ، قَالَ: أَلَا أَكْتُبُ لَكَ إِلَى عَامِلِهَا؟ قَالَ: أَكُونُ فِي غَبْرَاءِ النَّاسِ أَحَبُّ إِلَيَّ، قَالَ فَلَمَّا كَانَ مِنَ الْعَامِ الْمُقْبِلِ حَجَّ رَجُلٌ مِنْ أَشْرَافِهِمْ فَوَافَقَ عُمَرَ، فَسَأَلَهُ عَنْ أُوَيْسٍ فقَالَ: تَرَكْتُهُ رَثَّ الْبَيْتِ، قَلِيلَ الْمَتَاعِ، قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (يَأْتِي عَلَيْكُمْ أُوَيْسُ بْنُ عَامِرٍ مَعَ أَمْدَادِ أَهْلِ الْيَمَنِ مِنْ مُرَادٍ ثُمَّ مِنْ قَرَنٍ كَانَ بِهِ بَرَصٌ فَبَرَأَ مِنْهُ إِلَّا مَوْضِعَ دِرْهَمٍ، لَهُ وَالِدَةٌ هُوَ بِهَا بَرٌّ، لَوْ أَقْسَمَ عَلَى اللَّهِ لأَبَرَّهُ، فَإِنِ اسْتَطَعْتَ أَنْ يَسْتَغْفِرَ لَكَ فَافْعَلْ) فَأَتَى أُوَيْساً فَقَالَ: اسْتَغْفِرْ لِي، قَالَ: أَنْتَ أَحْدَثُ عَهْدًا بِسَفَرٍ صَالِحٍ فَاسْتَغْفِرْ لِي، قَالَ: لَقِيتَ عُمَرَ؟ قَالَ: نَعَمْ، فَاسْتَغْفَرَ لَهُ، فَفَطِنَ لَهُ النَّاسُ فَانْطَلَقَ عَلَى وَجْهِهِ. رَوَاهُ مُسْلِم.

وفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ أيضاً: عَنْ أُسير بنِ جَابرٍ ﷺ أَنَّ أَهل الكوفةِ وَفدُوا عَلَى عمرَ ﷺ وَفيهِمْ رجلُ يَسخُر بِأويسٍ، فقالَ عُمرُ: هَلْ هٰهُنَا أَحَدُ مِنَ الْقَرَنِيِّينَ؟ فَجاءَ ذَلكَ الرَّجلُ فقالَ عُمرُ: إنَّ رَسولَ اللَّهِ ﷺ قَدْ قَالَ: (إنَّ رَجُلاً يَأتيكُمْ مِنَ الْيَمَنِ يُقَالُ لَهُ: أُوَيْسُ لَا يَدَعُ بِالْيَمَنِ غَيْرَ أُمٍّ لَهُ، قَدْ كَانَ بِه بيَاضُ فَدَعَا اللَّهَ تَعَالَى فَأَذْهَبَهُ إلاّ مَوْضِعَ الدِّينَارِ أَوِ الدِّرْهَمِ، فَمَنْ لَقِيهُ مِنْكُمْ فَلْيَسْتَغْفِرْ لَكُمْ).

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: عَنْ عُمَرَ ﷺ قَالَ: إِنِّي سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ خَيْرَ التَّابِعِينَ رَجل يُقَالُ لَهُ: أُوَيْس، وَلَهُ وَالِدَة وَكَانَ بِهِ بَيَاض فَمُرُوهُ فَلْيَسْتَغْفِرْ لَكُمْ).

373- Ji Useyrê kurê ‘Emr (kurê Cabir jî têgotin), got: ‘Umerê kurê Xettab (r.) wextê leşkerê arîkar ji aliyê Yemenê ve bihata, wî ji wan pirsiyar dikir: Gelo Uweysê kurê ‘Amir di nav we de ye? Heta ku rastî Uweys hat û jê re got: Tu Uweysê kurê ‘Amir î? Wî got: Belê. Hz. ‘Umer got: Tu ji êla Murad û ji babikê Qerenê yî? Uweys got: Belê. Hz. ‘Umer got: Belakî li te peyda bûye û tu ji wê nexweşiyê baş bûyî, lêbelê qasî cihê dirhemekî maye, ne wisa ye? Uweys got: Belê. Hz. ‘Umer got: Dayika te heye? Uweys got: Belê. Hz. ‘Umer got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst ku wiha digot: “Wê ji aliyê Yemenê bi leşkerê arîkar ve Uweysê kurê ‘Amir ku ji êla Murad û ji babikê Qerenê de, dê were ba we. Belakî li wî peyda bûye û ew ji wê nexweşiyê baş bûye, lêbelê qasî cihê dirhemeke maye. Dayikeke wî heye, ew jê re zehf baş e. Heger ew ji bo çêbûna tiştekî bi Xwedê (c.c.) sond bixwe, dê Xwedê sonda wî bîne cih. Ya ‘Umer! Heger tu bikaribî ku ew ji bo te daxwaza bexşa gunehê te ji Xwedê bike, tu bike (yanî tu ji wî daxwaza xwe bike).” Vêca ya Uweys! Tu ji min re îstixfar bike. Uweys jî bo wî dua kir. Hz. ‘Umer ji Uweys re got: Tu diçî kuderê? Uweys got: Ez diçme Kûfeyê. Hz. ‘Umer got: Ez ji bo te nameyekê ji parêzgarê wê derê re binivîsim? Uweys got: Ez zêde dixwazim ku di nav gelê feqîr de bim. Ku kete sala paşiyê, mirovekî ji rûmetdarên Yemenê hate Heccê û rastî Hz. ‘Umer hat. Hz. ‘Umer pirsiyara Uweys jê kir. Ewî got: Min ew di maleke kevn de û bi xwarin û vexwarineke hindik hişt. Li ser vê yekê Hz. ‘Umer (r.) got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst ku wiha digot: “Wê ji aliyê Yemenê bi leşkerê arîkar ve Uweys’ê kurê ‘Amir ku ji êla Murad û ji babikê Qerenê ye, dê were ba we. Belakî li wî peyda bûye û ew ji wê nexweşiyê baş bûye, lêbelê qasî ciyê dirhemekê maye. Dayikeke wî heye, ew jê re zehf baş e. Heger ew ji bo çêbûna tiştekî bi Xwedê (c.c.) sond bixwe, dê Xwedê sonda wî bîne cî. Ya ‘Umer! Heger tu bikaribî ku ew ji bo te daxwaza bexşa gunehê te ji Xwedê bike, tu bike (yanî tu ji wî daxwaza xwe bike).” Vêca ew mirov wextê vegeriya, hate cem Uweys û jê re got: Tu ji bo min îstixfar bike. Uweys got: Tu nû ji rêwîtîke pîroz hatî, tu ji bo min dua bike. Wî mirovî got: Tu ji bo min îstixfar bike. Uweys got: Tu rastî Hz. ‘Umer (r.) hatî? Wî got: Belê. Vêca Uweys ji bo wî daxwaza bexşa gunehê wî ji Xwedê kir. Li ser vê yekê gel bi kemala wî hesiyan û ewî jî pişta xwe da wî diyarî û çû. *Muslim rîwayet kiriye.*

Di rîwayetek din a Muslim de: Dîsa ji Useyrê kurê Cabir (r.) hatiye

rîwayetkirin ku ehlê Kûfeyê hatin cem Hz. 'Umer (r.) û di nav wan de yekî ku tinazê xwe bi Uweys dikir hebû. Hz. 'Umer got: Ma li vê derê ji Qereniyan kesek heye? Li ser vê gotinê ew mirovê tinazê xwe bi Uweys dikir hate ba Hz. 'Umer. Vêca Hz. 'Umer (r.) got: Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Birastî mirovek ji aliyê Yemenê ve yê were ba we û jê re Uweys tê gotin, ji xeynê dayika wî tu kesê wî tune û ji bo xizmeta dayika xwe jî ji Yemenê venediqetiya. Belakî li wî peyda bûbû, ewî ji Xwedê dua xwest û Xwedê (c.c.) ew nexweşî ji xeynê ciyê dînarekî û yan jî dirhemekê ji wî bir. Vêca kê ji we rastî Uweys were, bila Uweys ji we re dua bike."

Di rîwayetek din a Muslim de wiha ye: Ji 'Umer (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: "Bêguman qenctirînê tabi'iyan mirovekî ku jê re Uweys tê gotin. Dayikek wî heye û belakî bi wî mirovê ve heye. Wextê hûn rastî wî hatin bila ew ji bo we ji Xwedê daxwaza bexşa gunehê we bike."

٣٧٤- عَنْ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ ﷺ قَالَ: اسْتَأْذَنْتُ النَّبِيَّ ﷺ فِي الْعُمْرَةِ، فَأَذِنَ لِي وَقَالَ: (لَا تَنْسَنَا يَا أُخَيَّ مِنْ دُعَائِكَ) فَقَالَ كَلِمَةً مَا يَسُرُّنِي أَنَّ لِي بِهَا الدُّنْيَا.

وَفِي رِوَايَةٍ قَالَ: (أَشْرِكْنَا يَا أُخَيَّ فِي دُعَائِكَ). حَدِيثٌ صَحِيحٌ رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي.

374- Ji 'Umerê kurê Xettab (r.), got: Min ji bo çûyina 'umreyê ji Pêxemberê Xwedê (s.) destûr xwest, wî jî destûra min da û got: "Ey birayê min, tu me ji duayê xwe jibîr neke." Bi vî şeklî axaftina wî bi min re, ji bo min bedelê dunyayê hemiyê bû.

Di rîwayetek din de wiha ye: "Ey birayê min tu me jî bike şirîkê duayê xwe." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine. Tirmizî gotiye ev hedîs hesen û sehîh e.*

٣٧٥- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يَزُورُ قُبَاءَ رَاكِباً وَمَاشِياً، فَيُصَلِّي فِيهِ رَكْعَتَيْنِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يَأْتِي مَسْجِدَ قُبَاءٍ كُلَّ سَبْتٍ رَاكِباً وَمَاشِياً، وَكَانَ ابْنُ عُمَرَ يَفْعَلُهُ.

375- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) peya û bi siwarî ziyareta mizgefta Qubayê dikir û di wê de jî du rekat nimêj dikir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetek din de wiha ye: Pêxemberê Xwedê (s.) her roja şemiyê geh bi sîwarî û geh jî peya dihate mizgefta Qubayê. Îbnu 'Umer jî (r.) wisa dikir.

  

## بَابُ فَضْلِ الْحُبِّ فِي اللَّهِ وَالْحَثِّ عَلَيْهِ
## HEZJÊKIRINA JI BO RIZA XWEDÊ (C.C.)

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿مُحَمَّدٌ رَسُولُ اللَّهِ وَالَّذِينَ مَعَهُ أَشِدَّاءُ عَلَى الْكُفَّارِ رُحَمَاءُ بَيْنَهُمْ﴾

"Muhemmed qasidê Xwedê ye û ew kesên digel wî ji kafiran re şedîd in, di mabeyna xwe de xwedanmerhemet in..."[1]

﴿وَالَّذِينَ تَبَوَّءُوا الدَّارَ وَالإِيمَانَ مِنْ قَبْلِهِمْ يُحِبُّونَ مَنْ هَاجَرَ إِلَيْهِمْ﴾

"Ew kesên ji beriya muhaciran Medîne ji bona xwe kirin cih û mesken, hem îman û îxlas jî dane nîşandan, ewna ji wan kesên bi bal wan ve hîcret kirine hez dikin."[2]

٣٧٦- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: ثَلَاثٌ مَنْ كُنَّ فِيهِ وَجَدَ حَلَاوَةَ الإِيمَانِ: أَنْ يَكُونَ اللَّهُ وَرَسُولُهُ أَحَبَّ إِلَيْهِ مِمَّا سِوَاهُمَا، وَأَنْ يُحِبَّ الْمَرْءَ لَا يُحِبُّهُ إِلَّا لِلَّهِ، وَأَنْ يَكْرَهَ أَنْ يَعُودَ فِي الْكُفْرِ كَمَا يَكْرَهُ أَنْ يُقْذَفَ فِي النَّارِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

376- Ji Enesê kurê Malik (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Sê xeslet hene. Kesê ku ev her sê xeslet di wî de peyda bibin bêguman ew mirov şirîniya îmanê dibîne: Divê ku Xwedê û Pêxemberê wî li cem wî mirovî ji yên xeynê wan zêdetir bêne hez jê kirin. Divê ku mirov wextê ji yekî hez kir bes ji bo wechê Xwedê jê hez bike û divê ku nexwaze vegere kufrê çawa ku naxwaze bikeve êgir." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٣٧٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: سَبْعَةٌ يُظِلُّهُمُ اللَّهُ فِي ظِلِّهِ يَوْمَ لَا ظِلَّ إِلَّا ظِلُّهُ: إِمَامٌ عَادِلٌ، وَشَابٌّ نَشَأَ بِعِبَادَةِ اللَّهِ، وَرَجُلٌ قَلْبُهُ مُعَلَّقٌ فِي الْمَسَاجِدِ، وَرَجُلَانِ تَحَابَّا فِي اللَّهِ اجْتَمَعَا عَلَيْهِ وَتَفَرَّقَا عَلَيْهِ، وَرَجُلٌ دَعَتْهُ امْرَأَةٌ ذَاتُ مَنْصِبٍ وَجَمَالٍ فَقَالَ: إِنِّي أَخَافُ اللَّهَ، وَرَجُلٌ تَصَدَّقَ بِصَدَقَةٍ فَأَخْفَاهَا حَتَّى لَا تَعْلَمَ شِمَالُهُ مَا تُنْفِقُ يَمِينُهُ،

1 Fetih, 48/29.
2 Heşr, 59/9.

وَرَجُلٌ ذَكَرَ اللَّهَ خَالِيًا فَفَاضَتْ عَيْنَاهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

377- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Heft (7) cure misilman hene ku Xwedê te'ala di rojek wisa de (ku roja qiyametê ye) wan dike bin siha (rehmeta) xwe ku ji xeynê wê sihê tu sih tunîne: Hakimê adil, xortê ku bi îbadet mezin bûye, mirovê ku qelbê wî bi mizgeftan ve girêdayî ye, du mirovê ku ji bo Xwedê ji hevdu hez kirine û ji bo wî hatine cem hev û ji bo wî ji hevdu veqetiyane, mirovê ku jinikeke berist/bi rûmet û xwedanrindayî wî gazî ba xwe ve bike, ew jî bêje: "Ez ji Xwedê ditirsim," mirovê ku sedeqekê bide û wê sedeqê bi dizî ve bike heta ku destê wî yê çepê nezanibe ka destê wî yê rastê çi daye û yek jî ew mirovê ku di tenêtiyê de Xwedê (c.c.) tê bîra wî û ji tirs û heybeta wî çavên wî tijî hêstir dibe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٧٨- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ: رَسُولُ الله ﷺ: (إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى يَقُولُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ: أَيْنَ الْمُتَحَابُّونَ بِجَلَالِي، الْيَوْمَ أُظِلُّهُمْ فِي ظِلِّي يَوْمَ لَا ظِلَّ إِلَّا ظِلِّي). رَوَاهُ مُسْلِم.

378- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman Xweda te'ala di roja qiyametê de dibêje: "Kanê li kû ne ew kesên ku ji bo celaleta min ji hev hezkirine? A ku ez wan bikim binê siha rehma xwe ku di îro de ji xeynê wê sihê tu sih tunene." *Muslim rîwayet kiriye.*

٣٧٩- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ لَا تَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ حَتَّى تُؤْمِنُوا، وَلَا تُؤْمِنُوا حَتَّى تَحَابُّوا، أَوَلَا أَدُلُّكُمْ عَلَى شَيْءٍ إِذَا فَعَلْتُمُوهُ تَحَابَبْتُمْ؟ أَفْشُوا السَّلَامَ بَيْنَكُمْ). رَوَاهُ مُسْلِم.

379- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ez bi wî yê ku nefsa min bi qudreta wî ye sond dixwim ku hûn naçine cennetê heta hûn îmanê neynîn û hûn îmanê jî naynin heta hûn ji hev hez nekin. Ez ji we re tiştekî bêjim wextê ku hûn wî tiştî bikin hûnê ji hevdu hez bikin? Hûn di nava xwe de selamê belav bikin." *Muslim rîwayet kiriye.*

٣٨٠- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ: (أَنَّ رَجُلاً زَارَ أَخاً لَهُ فِي قَرْيَةٍ أُخْرَى فَأَرْصَدَ اللَّهُ لَهُ عَلَى مَدْرَجَتِهِ مَلَكاً...) وَذَكَرَ الْحَدِيثَ إِلَى قَوْلِهِ: (إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى قَدْ أَحَبَّكَ كَمَا أَحْبَبْتَهُ فِيهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

380- Dîsa ji wî (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) hatiye rîwayetkirin: “Bêguman mirovek ji bo ziyareta birayê xwe yê di gundekî din de derkete rê. Vêca Xwedê te‘ala li ser rêya wî mirovî melekek peywirdar kir.” Ebû Hureyre hedîs heya gotina: “Tu bizanibe ku Xwedê (c.c.) jî, ji te hez kiriye çawa te ji bo Xwedê ji wî mirovî hez kiriye” zikr kir.[1] *Muslim rîwayet kiriye.*

٣٨١- عَنِ الْبَرَاءِ بْنِ عَازِبٍ ﵁ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ: أَنَّهُ قَالَ فِي الأَنْصَارِ (لَا يُحِبُّهُمْ إِلَّا مُؤْمِنٌ، وَلَا يُبْغِضُهُمْ إِلَّا مُنَافِقٌ، مَنْ أَحَبَّهُمْ أَحَبَّهُ اللَّهُ وَمَنْ أَبْغَضَهُمْ أَبْغَضَهُ اللَّهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

381- Ji Beraê kurê ‘Azib (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) hatiye rîwayetkirin ku wî di derbarê Ensariyan de wiha got: “Ji xeynê mu‘minan tu kes ji wan hez nake û ji xeynê munafiqan jî tu kes ji wan naqehire. Kî ji wan hez bike Xwedê jî ji wî hez dike û kî jî ji wan biqehire Xwedê jî ji wî diqehire.”
*Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٨٢- عَنْ مُعَاذِ بْنِ جَبَلٍ ﵁ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (قَالَ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ: الْمُتَحَابُّونَ فِي جَلَالِي لَهُمْ مَنَابِرُ مِنْ نُورٍ يَغْبِطُهُمُ النَّبِيُّونَ وَالشُّهَدَاءُ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

382- Ji Mu‘azê kurê Cebel (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst ku wiha digot: “Xwedayê te‘ala gotiye, ew kesê ji bo min ji hevdu hez dikin ji wan re mînberên ji nûrê hene ku pêxember û şehîd bi wan xibte dikin.”
*Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

٣٨٣- عَنْ أَبِي إِدْرِيسَ الخَوْلَانِيِّ رَحِمَهُ اللَّهُ قَالَ: دَخَلْتُ مَسْجِدَ دِمَشْقَ فَإِذَا فَتًى بَرَّاقُ الثَّنَايَا، وَإِذَا النَّاسُ مَعَهُ، فَإِذَا اخْتَلَفُوا فِي شَيْءٍ أَسْنَدُوهُ إِلَيْهِ وَصَدَرُوا عَنْ رَأْيِهِ، فَسَأَلْتُ عَنْهُ فَقِيلَ: هذَا مُعَاذُ بْنُ جَبَلٍ ﵁، فَلَمَّا كَانَ مِنَ الْغَدِ هَجَّرْتُ فَوَجَدْتُهُ قَدْ سَبَقَنِي بِالتَّهْجِيرِ، وَوَجَدْتُهُ يُصَلِّي، فَأَنْتَظَرْتُهُ حَتَّى قَضَى صَلَاتَهُ ثُمَّ جِئْتُهُ مِنْ قِبَلِ وَجْهِهِ، فَسَلَّمْتُ عَلَيْهِ، ثُمَّ قُلْتُ: وَاللَّهِ إِنِّي لَأُحِبُّكَ لِلَّهِ فَقَالَ: اللَّهِ، فَقُلْتُ: اللَّهِ، فَقَالَ: اللَّهِ؟ فَقُلْتُ: اللَّهِ، فَأَخَذَنِي بِحَبْوَةِ رِدَائِي فَجَذَبَنِي إِلَيْهِ، فَقَالَ: أَبْشِرْ، فَإِنِّي سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ:

1 Ev hedîs di babê beriya vî babî de bi jmara hedîsa (362) derbas bû.

(قَالَ اللَّهُ تَعَالَى: وَجَبَتْ مَحَبَّتِي لِلْمُتَحَابين فِيَّ، والْمُتَجَالِسِينَ فِيَّ، وَالْمُتَزَاوِرِينَ فِيَّ، وَالْمُتَبَاذِلِينَ فِيَّ). حَدِيثٌ صَحِيحٌ رَوَاهُ مَالِك فِي الْمَوَطإ بِإِسْنَاد الصَحِيح.

383- Ji Ebû Îdrîsê Xewlanî (r.), got: Ez ketim mizgefta Dimeşqê, min dît xortekî devken ku mirov li dora wî kombûne. Wextê wana di meselekê de îxtilaf dikirin, ji bo çareseriya wê meselê pirsiyar ji wî xortî dikirin û gotina wî qebûl dikirin. Min pirsa wî xortî kir, hate gotin: Ev Mu'azê kurê Cebel e (r.). Wextê bû sibeh û ez bi lez çûme mizgeftê, min dît ku ew beriya min hatiye mizgeftê û min dît ku ew nimêj dike. Ez li hêviya wî sekinîm heta ku ewî nimêja xwe temam kir û paşê ez hatim pêşberê wî û min selam lê kir û min got: Bi Xwedê kim ez ji te hez dikim. Ewî got: Tu ji bona Xwedê ji min hez dikî? Min got: Belê ji bo Xwedê ez ji te hez dikim. Ewî got: Tu ji bona Xwedê ji min hez dikî? Min got: Belê ji bo Xwedê ez ji te hez dikim. Li ser vê yekê ewî bi rexê 'ebayê min girt û ez bi bal xwe ve kişandim û got: Mizgînî ji te re. Lewra bêguman min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Xwedayê te'ala gotiye: "Hezjêkirina min wacib bûye ji bona wan kesên ku ji bo min ji hevdu hez kirine û ji bo min hatine cem hev û ji bo min ziyareta hevdu kirine û di oxira min de arîkariya hevdu kirine."

*Hedîseke sehîh e. Malik di Muwettayê de bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

٣٨٤- عَنْ أَبِى كَرِيمَةَ الْمِقْدَادِ بْنِ مَعْدِ يكَرِبَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِذَا أَحَبَّ الرَّجُلُ أَخَاهُ فَلْيُخْبِرْهُ أَنَّهُ يُحِبُّهُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ التِّرْمِذِي: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيح.

384- Ji Ebû Kerîme Mîqdad kurê Me'dîkerib (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê mirovekî ji birayê xwe hez kir bila jê re bêje ku jê hezdike." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine. Tirmizî gotiye ev hedîs hesen û sehîh e.*

٣٨٥- وَعَنْ مُعَاذٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ أَخَذَ بِيَدِهِ، وَقَالَ: (يَا مُعَاذُ، وَاللَّهِ إِنِّي لأَحِبُّكَ، ثُمَّ أُوصِيكَ يَا مُعَاذُ: لَا تَدَعَنَّ فِي دُبُرِ كُلِّ صَلَاةٍ تَقُولُ: اللَّهُمَّ أَعِنِّي عَلَى ذِكْرِكَ وَشُكْرِكَ وَحُسْنِ عِبَادَتِكَ). حَدِيثٌ حَسَنٌ رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالنَّسَائِي بِإِسْنَادٍ صَحِيح.

385- Ji Mu'az (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) bi destê wî girt û got: "Ya Mu'az! Bi sond, ez ji te hez dikim û vêca got: Ya Mu'az! Ezê şîretekê li te bikim û tu piştî nimêjê ewê neterikînî, tu wiha bêje: Xwedayo! Tu, li ser zikrê te, şukrê te û bi pakî pêkanîna îbadetê te arîkariya

  

min bikî." *Hedîs hesen e. Ebû Dawûd û Nesaî bi senedek sehîh rîwayet kirin e.*

٢٨٦- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ رَجُلاً كَانَ عِنْدَ النَّبِيِّ ﷺ فَمَرَّ رَجُلٌ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنِّي لأَحِبُّ هذَا، فَقَالَ لَهُ النَّبِيُّ ﷺ: (أَأَعْلَمْتَهُ؟) قَالَ: لَا، قَالَ: (أَعْلِمْهُ) فَلَحِقَهُ فَقَالَ: إِنِّي أُحِبُّكَ فِي اللَّهِ، فَقَالَ: أَحَبَّكَ اللَّهُ الَّذِي أَحْبَبْتَنِي لَهُ. رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

386- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovek li cem Pêxemberê Xwedê (s.) bû û li ber wî re mirovek bihurî. Vêca ewî mirovî got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ez bêguman ji vî mirovî hez dikim. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Te ev yek bi wî daye zanîn? Ewî got: Naxêr. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu vê yekê pê bide zanîn." Vêca ew mirov çû gihîşte wî mirovî û got: Ez ji bo Xwedê ji te hez dikim. Ewî jî got: Ew Xwedayê ku te ji bo wî ji min hez kiriye, ew jî ji te hez bike. *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

## بَابُ عَلاَمَاتِ حُبِّ اللَّهِ تَعَالَى لِلْعَبْدِ

## NÎŞANÊ HEZJÊKIRINA XWEDÊ TE'ALA JI 'EBDÊ XWE RE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿قُلْ إِنْ كُنْتُمْ تُحِبُّونَ اللَّهَ فَاتَّبِعُونِي يُحْبِبْكُمُ اللَّهُ وَيَغْفِرْ لَكُمْ ذُنُوبَكُمْ وَاللهُ غَفُورٌ رَحِيمٌ﴾

"Tu bêje: Heger hûn ji Xwedê hez dikin hûn bibin tabi'ê min, wê Xwedê jî ji we hez bike û wê gunehên we bibexişîne. Xwedê xefûr e û rehîm e."[1]

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا مَنْ يَرْتَدَّ مِنْكُمْ عَنْ دِينِهِ فَسَوْفَ يَأْتِي اللَّهُ بِقَوْمٍ يُحِبُّهُمْ وَيُحِبُّونَهُ أَذِلَّةٍ عَلَى الْمُؤْمِنِينَ أَعِزَّةٍ عَلَى الْكَافِرِينَ يُجَاهِدُونَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ وَلَا يَخَافُونَ لَوْمَةَ لَائِمٍ ذَلِكَ فَضْلُ اللَّهِ يُؤْتِيهِ مَنْ يَشَاءُ وَاللهُ وَاسِعٌ عَلِيمٌ﴾

"Gelî ewên bawerî anîne! Kî ji we ji dînê xwe vegere bi bal kufrê ve, wê Xwedê di ciyê wî de qewmekî bîne ku Xwedê ji wan hez dike û ew jî ji Xwedê hez dikin. Ewna ji mu'minan re dilnizm in û ji kafiran re jî xurt û serbilind in. Û di rêya Xwedê de cîhad dikin û ji lewm û 'îtaba kafiran natirsin. Eva jî fezl û kerema Xwedê ye ku Xwedê ewê dide kesê ku jê hez dike. Xwedê fezl û kerema wî fireh e, pir zana ye."[2]

1 Alî 'Îmran, 3/31.
2 Ma'îde, 5/54.

٣٨٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (إِنَّ اللَّهَ قَالَ مَنْ عَادَى لِي وَلِيّاً فَقَدْ آذَنْتُهُ بِالْحَرْبِ، وَمَا تَقَرَّبَ إِلَيَّ عَبْدِي بِشَيْءٍ أَحَبَّ إِلَيَّ مِمَّا افْتَرَضْتُ عَلَيْهِ، وَمَا يَزَالُ عَبْدِي يَتَقَرَّبُ إِلَيَّ بِالنَّوَافِلِ حَتَّى أُحِبَّهُ، فَإِذَا أَحْبَبْتُهُ كُنْتُ سَمْعَهُ الَّذِي يَسْمَعُ بِهِ، وَبَصَرَهُ الَّذِي يُبْصِرُ بِهِ، وَيَدَهُ الَّتِي يَبْطِشُ بِهَا، وَرِجْلَهُ الَّتِي يَمْشِي بِهَا، وَإِنْ سَأَلَنِي لأَعْطِيَنَّهُ، وَلَئِنِ اسْتَعَاذَنِي لأُعِيذَنَّهُ). رَوَاهُ البُخَارِي.

387- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Her kî neyartiya weliyekî min bike, bêguman ezê herbê bi wî re bikim. Ebdê min, ji wê tişta ku min li ser wî ferz kirî bêtir bi tiştekî din nabe mehbûbtir li ba min. ‘Ebdê min her bi pêkanîna sunnetan nêzîkî min dibe, ta ku ez ji wî hez bikim. Wextê ku min jê hez kir; ezê bibim guhê wî yê ku bi wî dibihîze, û hem ezê bibim çavê wî yê ku pê dibîne, û ezê bibim destê wî yê ku pê dixebite, û hem ezê bibim piyê wî yê ku pê dimeşe. Heger ew ji min bixwaze ezê daxwaza wî bi cih bînim û eger ew daxwaza parastina xwe ji min bike ezê wî biparêzim.” *Buxarî riwayet kiriye.*

٣٨٨- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِذَا أَحَبَّ اللَّهُ الْعَبْدَ نَادَى جِبْرِيلَ: إِنَّ اللَّهَ يُحِبُّ فُلاَناً فَأَحْبِبْهُ، فَيُحِبُّهُ جِبْرِيلُ فَيُنَادِي جِبْرِيلُ فِي أَهْلِ السَّمَاءِ: إِنَّ اللَّهَ يُحِبُّ فُلاَنًا فَأَحِبُّوهُ فَيُحِبُّهُ أَهْلُ السَّمَاءِ، ثُمَّ يُوضَعُ لَهُ الْقَبُولُ فِي الأَرْضِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِم: (إِنَّ اللَّهَ إِذَا أَحَبَّ عَبْداً دَعَا جِبْرِيلَ فَقَالَ: إِنِّي أُحِبُّ فُلاَنًا فَأَحِبَّهُ، فَيُحِبُّهُ جِبْرِيلُ ثُمَّ يُنَادِي فِي السَّمَاءِ، فَيَقُولُ: إِنَّ اللَّهَ يُحِبُّ فُلاَنًا فَأَحِبُّوهُ فَيُحِبُّهُ أَهْلُ السَّمَاءِ، ثُمَّ يُوضَعُ لَهُ الْقَبُولُ فِي الأَرْضِ، وَإِذَا أَبْغَضَ عَبْداً دَعَا جِبْرِيلَ فَيَقُولُ: إِنِّي أُبْغِضُ فُلاَنًا فَأَبْغِضْهُ فَيُبْغِضُهُ جِبْرِيلُ، ثُمَّ يُنَادِي فِي أَهْلِ السَّمَاءِ: إِنَّ اللَّهَ يُبْغِضُ فُلاَنًا فَأَبْغِضُوهُ، فَيُبْغِضُونَهُ ثُمَّ تُوضَعُ لَهُ الْبَغْضَاءُ فِي الأَرْضِ).

388- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê Xwedê ji ‘ebdekî hez kir, gazî Cebraîl dike û emrî wî dike ku Xwedê ji filan kesî hez dike, tu jî ji wî hez bike. Vêca Cebraîl ji wî hez dike û gazî ehlê

asîmanan dike û dibêje bêguman Xweda te'ala ji filan kesî hez dike, hûn jî ji wî hez bikin. Li ser vê gotinê ehlê asîmanan jî ji wî hez dikin. Paşê jî hezjêkirina wî dikeve dilê ehlê erdê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayeteka dîtir ya di Muslim de: Bêguman wextê Xwedê ji 'ebdekî hez kir gazî Cebraîl dike û jê re dibêje: Bêguman min ji filan kesî hez kir tu jî ji wî hez bike. Vêca Cebraîl ji wî hez dike û paşê gazî ehlê asîmanan dike û dibêje bêguman Xweda te'ala ji filan kesî hez dike, hûn jî ji wî hez bikin. Li ser vê gotinê ehlê asîmanan jî ji wî hez dikin paşê jî hezjêkirina wî dikeve dilê ehlê erdê. Û wextê Xwedê te'ala ji 'ebdekî bixeyîde gazî Cebraîl dike û dibêje bêguman ez ji filan kesê xeyîdime tu jî jê bixeyîde. Vêca Cebraîl jî ji wî dixeyîde û paşê jî gazî ehlê asîmanan dike: Bêguman Xweda 'ezze we celle ji filan kesê xeyîdiye, hûn jî ji wî bixeyîdin paşê jî xeyda wî kesî dikeve di nav ehlê erdê de."

٣٨٩- عَنْ عَائِشَةَ ﵂ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ بَعَثَ رَجُلاً عَلَى سَرِيَّةٍ، وَكَانَ يَقْرَأُ لأَصْحَابِهِ فِي صَلَاتِهِمْ فَيَخْتِمُ بِ (قُلْ هُوَ اللَّهُ أَحَدٌ) فَلَمَّا رَجَعُوا ذَكَرُوا ذَلِكَ لِلنَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ: (سَلُوهُ لأَيِّ شَيْءٍ يَصْنَعُ ذَلِكَ؟) فَسَأَلُوهُ، فَقَالَ: لأَنَّهَا صِفَةُ الرَّحْمَنِ، وَأَنَا أُحِبُّ أَنْ أَقْرَأَ بِهَا، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (أَخْبِرُوهُ أَنَّ اللَّهَ يُحِبُّهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

389- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) nijdeyek/seriyek bi fermandariya mirovekî şand. Vêca wî mirovî ji hevalên xwe re di nimêjê de Qur'ana pîroz dixwend û bi xwendina "Qul huwellahu ehedun" xetim dikir. Wextê ew zivirîn ev rewşa ji Pêxemberê Xwedê (s.) re gotin. Pêxemberê Xwedê got: "Hûn ji wî pirsiyar bikin ka ji bo çi wisa dikir." Ewan jê pirsiyar kirin. Ewî got: Ji ber ku "Qul huwellahu ehedun" sîfetê Rehman e, ez hez dikim wî sûrêtî bixwînim. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Hûn jî ji wî re bibêjin ku Xwedê jî ji wî hez dike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ التَّحْذِيرِ مِنْ إِيذَاءِ الصَّالِحِينَ وَالضَّعَفَةِ وَالْمَسَاكِينِ
## TIRSANDINA JI EZIYETDAYINA ZE'ÎF Û MISKÎNAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَالَّذِينَ يُؤْذُونَ الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ بِغَيْرِ مَا اكْتَسَبُوا فَقَدِ احْتَمَلُوا بُهْتَانًا وَإِثْمًا مُبِينًا﴾

"Ewên bi neheqî û bê tawan eziyetê li mêrê û jinên bawermend dikin, bi sond ew sîtem û bêbextiyeke mezin û gunehekî zêde eşkere dikin."[1]

﴿فَأَمَّ الْيَتِيمَ فَلَا تَقْهَرْ ۝ وَأَمَّا السَّابِلَ فَلَا تَنْهَرْ﴾

"Ha nebe tu dilê yêtîmî bihêlî û nebe ewê ku parsê dike tu wî bizivirînî."[2]

٣٩٠- عَنْ جُنْدَبِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ صَلَّى صَلَاةَ الصُّبْحِ فَهُوَ فِي ذِمَّةِ اللَّهِ، فَلَا يَطْلُبَنَّكُمُ اللَّهُ مِنْ ذِمَّتِهِ بِشَيْءٍ، فَإِنَّهُ مَنْ يَطْلُبْهُ مِنْ ذِمَّتِهِ بِشَيْءٍ يُدْرِكْهُ ثُمَّ يَكُبَّهُ عَلَى وَجْهِهِ فِي نَارِ جَهَنَّمَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

390- Ji Cundebê kurê 'Ebdullah (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Ew kesê nimêja sibehê bi cema'etî bike ew dikeve binê stirandina Xwedê. Vêca bila Xwedê te'ala ji stirandina xwe bi tiştekî we ta qîb neke, lewra bêguman Xweda te'ala kê bixwaza ji zimmeta xwe wê qudreta wî, ewî bigire û paşê jî dê ewî deverû bavêje cehennemê. *Muslim riwayet kiriye.*

## بَابُ إِجْرَاءِ أَحْكَامِ النَّاسِ عَلَى الظَّاهِرِ وَسَرَائِرِهِمْ إِلَى اللَّهِ

## ÎCRAKIRINA EHKAMAN BI ANEGORÎ ZAHIRÎ Û SIPARTINA TIŞTÊN DIZÎ JÎ BI BAL XWEDÊ VE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿فَإِنْ تَابُوا وَأَقَامُوا الصَّلَاةَ وَآتَوُا الزَّكَاةَ فَخَلُّوا سَبِيلَهُمْ﴾

"Heger wana tobe kirin û nimêj kirin û zikata xwe dan, hûn wan serbest bihêlin."[3]

٣٩١- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أُمِرْتُ أَنْ أُقَاتِلَ النَّاسَ حَتَّى يَشْهَدُوا أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ، وَأَنَّ مُحَمَّداً رَسُولُ اللَّهِ، وَيُقِيمُوا الصَّلَاةَ، وَيُؤْتُوا الزَّكَاةَ، فَإِذَا فَعَلُوا ذَلِكَ عَصَمُوا مِنِّي دِمَاءَهُمْ وَأَمْوَالَهُمْ إِلَّا بِحَقِّ الإِسْلَامِ، وَحِسَابُهُمْ عَلَى اللَّهِ). رَوَاهُ البُخَارِيُّ وَمُسْلِمٌ.

1 Ehzab, 33/58.
2 Duha, 93/9-10.
3 Tewbe, 9/5.

391- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Emrê min hatiye kirin ku ez bi însanan re şer bikim heta ku; şehde bidin ku ji xeynê Xwedê tu îlah tune û Hz. Muhemmed jî qasidê wî ye, nimêjê bikin û zikatê bidin. Wextê evan kirin xûn û malê xwe ji min distirînin. Bes heqê Îslamê ne tê de. Û hesabê wan jî li ser Xwedê ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٩٢- عَنْ أَبِي عَبْدِ اللَّهِ طَارِقِ بْنِ أَشْيَمَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ قَالَ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ وَكَفَرَ بِمَا يُعْبَدُ مِنْ دُونِ اللَّهِ حَرُمَ مَالُهُ وَدَمُهُ، وَحِسَابُهُ عَلَى اللَّهِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

392- Ji Ebû 'Ebdullah Tariqê kurê Eşyem (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst ku digot: "Ew kesê ku bêje "La îlahe îllellah" û ji xeynê Xwedê baweriyê bi tu me'bûdan neyîne, malê wî û xûna wî heram e. Bes Xwedê 'ezze we celle bi anegorî niyeta ewan bi wan re hisabê dibîne." *Muslim rîwayet kiriye.*

٣٩٣- عَنِ أَبِي مَعْبَ الْمِقْدَادِ بْنِ الأَسْوَدِ ﷺ قَالَ: قُلْتُ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ: أَرَأَيْتَ إِنْ لَقِيتُ رَجُلاً مِنَ الْكُفَّارِ فَاقْتَتَلْنَا، فَضَرَبَ إِحْدَى يَدَيَّ بِالسَّيْفِ فَقَطَعَهَا، ثُمَّ لَاذَ مِنِّي بِشَجَرَةٍ فَقَالَ: أَسْلَمْتُ لِلَّهِ، أَفَأَقْتُلُهُ يَا رَسُولَ اللَّهِ بَعْدَ أَنْ قَالَهَا؟ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَقْتُلْهُ) فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنَّهُ قَدْ قَطَعَ يَدِي ثُمَّ قَالَ ذَلِكَ بَعْدَ أَنْ قَطَعَهَا، أَفَأَقْتُلُهُ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَقْتُلْهُ، فَإِنْ قَتَلْتَهُ فَإِنَّهُ بِمَنْزِلَتِكَ قَبْلَ أَنْ تَقْتُلَهُ، وَإِنَّكَ بِمَنْزِلَتِهِ قَبْلَ أَنْ يَقُولَ كَلِمَتَهُ الَّتِي قَالَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

393- Ji Ebû Me'bed Mîqdadê kurê Eswed (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) re got: Ya Resûlê Xwedê! Heger rojekê ez rastê kafirekî werim û em şer bikin, vêca ew bi şûrê xwe li destê min bide û destekî min jêbike, piştre da ku xwe ji min biparêze bikeve ber darekê û bêje: "Ez misilman bûm," ez wî bikujim? Pêxemberê Xwedê (s.) got: Tu wî nekuje. Min got: Ya Resûlê Xwedê! Ewî mirovî piştî ku destekî min jêkir ev gotin got, ez wî bikujim? Pêxemberê Xwedê (s.) dîsa got: Tu wî nekuje. Heger tu ewî kesî bikujî piştî ku ewî ew gotin got, ew mirov wekî halê te yê beriya ku tu wî bikujî (yanî masûm e), hem tu jî di halê wî yê beriya ku wî ew gotin bigota de yî. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٩٤- عَنْ أُسَامَةَ بْنَ زَيْدٍ ﵁ قَالَ: بَعَثَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِلَى الْحُرَقَةِ مِنْ جُهَيْنَةَ، فَصَبَّحْنَا الْقَوْمَ عَلَى مِيَاهِهِمْ، وَلَحِقْتُ أَنَا وَرَجُلٌ مِنَ الأَنْصَارِ رَجُلاً مِنْهُمْ فَلَمَّا غَشِينَاهُ قَالَ: لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ، فَكَفَّ عَنْهُ الأَنْصَارِيُّ، وَطَعَنْتُهُ بِرُمْحِي حَتَّى قَتَلْتُهُ، قَالَ: فَلَمَّا قَدِمْنَا الْمَدِينَةَ بَلَغَ ذَلِكَ النَّبِيَّ ﷺ فَقَالَ لِي: (يَا أُسَامَةُ أَقَتَلْتَهُ بَعْدَ مَا قَالَ: لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ؟ قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنَّمَا كَانَ مُتَعَوِّذاً، فَقَالَ: (أَقَتَلْتَهُ بَعْدَ مَا قَالَ: لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ؟) فَمَا زَالَ يُكَرِّرُهَا عَلَيَّ حَتَّى تَمَنَّيْتُ أَنِّي لَمْ أَكُنْ أَسْلَمْتُ قَبْلَ ذَلِكَ الْيَوْمِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَقَالَ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ وَقَتَلْتَهُ؟) قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنَّمَا قَالَهَا خَوْفًا مِنَ السِّلَاحِ، قَالَ: (أَفَلَا شَقَقْتَ عَنْ قَلْبِهِ حَتَّى تَعْلَمَ أَقَالَهَا أَمْ لَا؟) فَمَا زَالَ يُكَرِّرُهَا عَلَيَّ حَتَّى تَمَنَّيْتُ أَنِّي أَسْلَمْتُ يَوْمَئِذٍ.

394- Ji Usameyê kurê Zeyd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) em şandin ba Xirqe ji qebîla Cûheyniyan, me serê sibê de avête ser kehniyên wan. Ez û mirovek bi Ensariyan em gihaştin mirovekî ji wan, wextê ku em nêzîkî wî bûn, got: “La îlahe îllellah”. Li ser vê yekê ewî Ensarî jê vekişiya, lêbelê min bi rima xwe li wî da heta min ew kuşt. Wextê em zivirîn Medînê, Pêxemberê Xwedê (s.) bi vê bûyerê hesiya. Vêca Resûlê Xwedê ji min re got: Ey Usame! Piştî ku ewî got “La îlahe îllellah” te ew kuşt? Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Bes ewî kesî bi “La îlahe îllellah” ê xwe ji min parast. Dîsa Pêxemberê Xwedê (s.) got: Piştî ku ewî got “La îlahe îllellah” te ew kuşt? Resûlê Xwedê ev cumle li ser min wisa tekrar kir heta ku min daxwaz kir ku; ez beriya îro misilman nebûyama. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayeteka dîtir de: Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Ewî got la îlahe îllellah û te jî ew kuşt?” Min got: Ya Resûlê Xwedê! Ewî mirovî bes ji bo tirsa çekê got “la îlahe îllellah.” Pêxemberê Xwedê (s.) got: Ma qey te dilê wî şeq kiribû, ta ku tu bizanî wî ji tirsa gotiye yan na! Resûlê Xwedê ev cumle wisa pir tekrar kir ku ta min xwest ez wê rojê bûbama misulman.

٣٩٥- عَنْ جُنْدُبِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﵁ إِنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ بَعَثَ بَعْثًا مِنَ الْمُسْلِمِينَ إِلَى قَوْمٍ مِنَ الْمُشْرِكِينَ وَإِنَّهُمُ الْتَقَوْا، فَكَانَ رَجُلٌ مِنَ الْمُشْرِكِينَ إِذَا شَاءَ أَنْ يَقْصِدَ إِلَى رَجُلٍ

مِنَ الْمُسْلِمِينَ قَصَدَ لَهُ فَقَتَلَهُ، وَإِنَّ رَجُلاً مِنَ الْمُسْلِمِينَ قَصَدَ غَفْلَتَهُ وَكُنَّا نَتَحَدَّثُ أَنَّهُ أُسَامَةُ بْنُ زَيْدٍ، فَلَمَّا رَفَعَ عَلَيْهِ السَّيْفَ قَالَ: لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ فَقَتَلَهُ، فَجَاءَ الْبَشِيرُ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَسَأَلَهُ وأَخْبَرَهُ حَتَّى أَخْبَرَهُ خَبَرَ الرَّجُلِ كَيْفَ صَنَعَ؟ فَدَعَاهُ فَسَأَلَهُ، فَقَالَ: (لِمَ قَتَلْتَهُ؟) قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَوْجَعَ فِي الْمُسْلِمِينَ وَقَتَلَ فُلَانًا وَفُلَانًا، وَسَمَّى لَهُ نَفَراً، وَإِنِّي حَمَلْتُ عَلَيْهِ، فَلَمَّا رَأَى السَّيْفَ قَالَ: لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ، قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَقَتَلْتَهُ؟) قَالَ: نَعَمْ، قَالَ: (فَكَيْفَ تَصْنَعُ بِلَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ إِذَا جَاءَتْ يَوْمَ الْقِيَامَةِ؟) قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ اسْتَغْفِرْ لِي، قَالَ: (وَكَيْفَ تَصْنَعُ بِلَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ إِذَا جَاءَتْ يَوْمَ الْقِيَامَةِ؟) فَجَعَلَ لَا يَزِيدُ عَلَى أَنْ يَقُولَ: (كَيْفَ تَصْنَعُ بِلَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ إِذَا جَاءَتْ يَوْمَ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

395- Ji Cundubê kurê ‘Ebdullah (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) cema‘etek ji misilmanan şande ba qewmekî ji muşrikan, ev her du kom rastî hevdu hatin. Vêca kîjan mirovê muşrikan biviya ku misilmanekî bikuje dihat li ser wan de digirt û dikuşt. Bêguman mirovekî misilman jî qesda wî mirovî dikir ku ewî bêhay bigire. Me dît navbêna xwe de digot ku ew mirov Usameê kurê Zeyd e. Wextê Usame şûrê xwe li ser wî muşrikî bilind kir, ewî muşrikî got; “La îlahe îllellah”, û Usame ew dîsa jî kuşt. Mizgînker hate cem Pêxemberê Xwedê (s.), Resûlê Xwedê pirsa cîhadê ji wî kir, ewî jî jê re bûyerên cîhadê gotin, heta rewşa Usame ku çi kiriye bi wî mirovê muşrik ew jî neqil kir. Li ser vê yekê Resûlê Xwedê gazî Usame kir û jê pirsî û got: Te ji bo çi ew mirov kuşt? Usame got: Ya Resûlê Xwedê! Ewî misilman êşandin û filan û filan kuşt –navê çendekan got– min jî bêguman êriş da li ser wî, wextê wî şûr dît got “La îlahe îllellah.” Pêxemberê Xwedê (s.) got: Te ew kuşt? Usame got: Belê. Pêxemberê Xwedê (s.) got: Tê çi bikî wextê roja qiyametê bi “La îlahe îllellah”ê hat? Usame got: Tê îstixfarê ji min re bike ya Resûlê Xwedê. Pêxemberê Xwedê (s.) got: Tê çi bikî wextê roja qiyametê bi “La îlahe îllellah”ê hat? Resûlê Xwedê (s.) gotinek zêde nekir li ser gotina, Tê çi bikî wextê roja qiyametê bi “La îlahe îllellah”ê hat? *Muslim rîwayet kiriye.*

٣٩٦- عَنْ عَبْدَ اللَّهِ بْنَ عُتْبَةَ بن مَسْعُودٍ قَالَ: سَمِعْتُ عُمَرَ بْنَ الْخَطَّابِ ﷺ يَقُولُ: إِنَّ أُنَاسًا كَانُوا يُؤْخَذُونَ بِالْوَحْيِ فِي عَهْدِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَإِنَّ الْوَحْيَ قَدِ انْقَطَعَ، وَإِنَّمَا

تَأْخُذُكُمُ ٱلآنَ بِمَا ظَهَرَ لَنَا مِنْ أَعْمَالِكُمْ، فَمَنْ أَظْهَرَ لَنَا خَيْراً أَمِنَّاهُ وَقَرَّبْنَاهُ وَلَيْسَ لَنَا مِنْ سَرِيرَتِهِ شَيْءٌ، اللَّهُ يُحَاسِبُهُ فِي سَرِيرَتِهِ، وَمَنْ أَظْهَرَ لَنَا سُوءاً لَمْ نَأْمَنْهُ وَلَمْ نُصَدِّقْهُ، وَإِنْ قَالَ إِنَّ سَرِيرَتَهُ حَسَنَةٌ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

396- Ji ‘Ebdullahê kurê ‘Utbeyê kurê Mes‘ûd (r.), got: Min ji ‘Umerê kurê Xettab (r.) bihîst digot: Bêguman însan di wextê Pêxemberê Xwedê (s.) de bi wehyê dihatin muaxezekirin (ceza kirin), halbûkî wehî jî hatiye birîn. Lêbelê îro bêguman emê we bi anegorî kar û ‘emelê we yê ku ji me re eşkere dibin muaxeze bikin. Vêca ew kesê ku ji me re xêrê eşkere bike, emê jî ewî emîn bizanin û emê xwe nêzîkî wî bikin, û şuxlê me bi halê wî yê dizî neketiye. Xwedê ‘ezze we celle wê ewî muhasebe bike li ser rewşa wî ya dizî. Ew kesê ku ji me re xerabiyê eşkere bike em ewî emîn nizanin û baweriya me bi wî nayê çendan ew bêje ku dilê wî pak û paqij e. *Buxarî riwayet kiriye.*

## بَابُ الْخَوْفِ
## TIRS

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَإِيَّايَ فَارْهَبُونِ﴾

“Hûn bes ji min bitirsin.”[1]

﴿إِنَّ بَطْشَ رَبِّكَ لَشَدِيدٌ﴾

“Bêguman girtina Rebbê te bi zaliman qewî ye.”[2]

﴿وَكَذٰلِكَ أَخْذُ رَبِّكَ إِذَا أَخَذَ الْقُرَى وَهِيَ ظَالِمَةٌ إِنَّ أَخْذَهُ أَلِيمٌ شَدِيدٌ ۝ إِنَّ فِي ذٰلِكَ لَآيَةً لِمَنْ خَافَ عَذَابَ ٱلآخِرَةِ ذٰلِكَ يَوْمٌ مَجْمُوعٌ لَهُ النَّاسُ وَذٰلِكَ يَوْمٌ مَشْهُودٌ ۝ وَمَا نُؤَخِّرُهُ إِلَّا لِأَجَلٍ مَعْدُودٍ ۝ يَوْمَ يَأْتِ لَا تَكَلَّمُ نَفْسٌ إِلَّا بِإِذْنِهِ فَمِنْهُمْ شَقِيٌّ وَسَعِيدٌ ۝ فَأَمَّا الَّذِينَ شَقُوا فَفِي النَّارِ لَهُمْ فِيهَا زَفِيرٌ وَشَهِيقٌ﴾

‘Ezabê/girtina Rebbê te wiha ye: Wextê ew ehlê diyarekî bigre/muaxeze bike û ehlê wî diyarî jî sîtemkar bin bêguman muaxezekirina wî

1 Beqere, 2/40.
2 Burûc, 85/12.

pir êşdar û giran e. Bêguman di vê muaxezê de ji bo wî kesê ku ditirse ji 'ezabê axîretê îbret heye. Roja qiyametê rojek wisa ye ku hemû însan tê de dicivin û hazir dibin. Û em wê rojê ancax ji bo wextekî hejmartî paşve dihêlin. Wextê roja qiyametê bê, bê destûra Xwedê tu kes napeyive. Vêca hinek ji wan şeqî ne û hinek jî ji wan se'îd in. Vêca ew kesên ku şeqî ne, di êgir de ne û ji wan re di êgir de qajînî û îske îsk heye."[1]

﴿وَيُحَذِّرُكُمُ اللَّهُ نَفْسَهُ﴾

"Xwedê we ji xwe ditirsîne (ji gunehan)."[2]

﴿يَوْمَ يَفِرُّ الْمَرْءُ مِنْ أَخِيهِ ۝ وَأُمِّهِ وَأَبِيهِ ۝ وَصَاحِبَتِهِ وَبَنِيهِ ۝ لِكُلِّ امْرِئٍ مِنْهُمْ يَوْمَئِذٍ شَأْنٌ يُغْنِيهِ﴾

"Roja qiyametê rojek wisa ye mirov ji birayê xwe û ji dayika xwe û ji hevala xwe û ji zarokê xwe direve, wê rojê her kes dikeve derdê xwe." [3]

﴿يَا أَيُّهَا النَّاسُ اتَّقُوا رَبَّكُمْ إِنَّ زَلْزَلَةَ السَّاعَةِ شَيْءٌ عَظِيمٌ ۝ يَوْمَ تَرَوْنَهَا تَذْهَلُ كُلُّ مُرْضِعَةٍ عَمَّا أَرْضَعَتْ وَتَضَعُ كُلُّ ذَاتِ حَمْلٍ حَمْلَهَا وَتَرَى النَّاسَ سُكَارَى وَمَا هُمْ بِسُكَارَى وَلَكِنَّ عَذَابَ اللَّهِ شَدِيدٌ﴾

"Gelî mirovan! Ji Rebbê xwe bitirsin. Lewra bêguman hejandina roja qiyametê tiştek mezin e. Roja ku hûn wê dibînin, çiqas jinên şîrdar hene zarokên xwe jibîr dikin û her jinên hemle jî hemla xwe datînin (yanî berdavêjin) û tu însanan dibînî ku wekî serxweşan e û ya rastî ew ne serxweş in, lêbelê ezabê Xwedê şedîd e."[4]

﴿وَلِمَنْ خَافَ مَقَامَ رَبِّهِ جَنَّتَانِ﴾

"Ji bo kesê ku ji meqam û mezinahiya rebbê xwe ditirse du (2) cennet hene."[5]

﴿وَأَقْبَلَ بَعْضُهُمْ عَلَى بَعْضٍ يَتَسَاءَلُونَ ۝ قَالُوا إِنَّا كُنَّا قَبْلُ فِي أَهْلِنَا مُشْفِقِينَ ۝ فَمَنَّ اللَّهُ عَلَيْنَا وَوَقَانَا عَذَابَ السَّمُومِ ۝ إِنَّا كُنَّا مِنْ قَبْلُ نَدْعُوهُ إِنَّهُ هُوَ الْبَرُّ الرَّحِيمُ﴾

1 Hûd, 11/102-106.
2 Alî 'Îmran, 3/28.
3 'Ebese, 80/34-37.
4 Hec, 22/1-2.
5 Rehman, 55/46.

“Hinek ji wan berê xwe dane hinekan û ji rewşa cennetê axifîn û gotin bêguman em jî di berê de (yanî di dunyayê de) di nav zar û zêçê xwe de ji Xwedê ‘ezze we celle ditirsiyan. Vêca Xwedê minet li me kir û em ji ‘ezabê xwe yê wekî bayê Sam (semûm) ku diçe nava hundirê me parastin. Bêguman em hemû di berê de me gazî Xwedê dikir ku bêguman ew, qencîkar û pir xwedan-rehm e.”[1]

٣٩٧- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: حَدَّثَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَهُوَ الصَّادِقُ الْمَصْدُوقُ: (إِنَّ أَحَدَكُمْ يُجْمَعُ خَلْقُهُ فِي بَطْنِ أُمِّهِ أَرْبَعِينَ يَوْمًا نُطْفَةً، ثُمَّ يَكُونُ عَلَقَةً مِثْلَ ذَلِكَ، ثُمَّ يَكُونُ مُضْغَةً مِثْلَ ذَلِكَ، ثُمَّ يُرْسَلُ الْمَلَكُ فَيَنْفُخُ فِيهِ الرُّوحَ، وَيُؤْمَرُ بِأَرْبَعِ كَلِمَاتٍ: رِزْقِهِ، وَأَجَلِهِ، وَعَمَلِهِ، وَشَقِيٌّ أَوْ سَعِيدٌ، فَوَ الَّذِى لَا إِلَهَ غَيْرُهُ إِنَّ أَحَدَكُمْ لَيَعْمَلُ بِعَمَلِ أَهْلِ الْجَنَّةِ حَتَّى مَا يَكُونُ بَيْنَهُ وَبَيْنَهَا إِلَّا ذِرَاعٌ فَيَسْبِقُ عَلَيْهِ الْكِتَابُ فَيَعْمَلُ بِعَمَلِ أَهْلِ النَّارِ فَيَدْخُلُهَا، وَإِنَّ أَحَدَكُمْ لَيَعْمَلُ بِعَمَلِ أَهْلِ النَّارِ حَتَّى مَا يَكُونُ بَيْنَهُ وَبَيْنَهَا إِلَّا ذِرَاعٌ فَيَسْبِقُ عَلَيْهِ الْكِتَابُ فَيَعْمَلُ بِعَمَلِ اَهْلِ الْجَنَّةِ فَيَدْخُلُهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

397- Ji kurê Mes‘ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) bi me re axaft (ew rastgo ye û gotinên wî tên tesdîqkirin): Bêguman yek ji we, xulqiyeta wî di rehma dayika wî de di çil rojan wek nutfe kom dibe, paşê jî wekî vê (çil rojan) dibe xûnek meyayî (‘eleqe), paşê jî wekî vê (çil rojan) dibe paregoştek (mudxe). Piştre milyaket tê şandin û ruh pif dike wî. Emrê melekê tê kirin bi çar kelîman û dinîvîse: 1- Rizqê wî. 2- Ecelê wî. 3- ‘Emelê wî. 4- Teqdîra bedbûna/şeqaweta wî, yan jî qencbûna/se‘adeta wî. Ez bi wî yê ku ji xeynê wî tu îlah tuneye sond dixwim ku yek ji we kar û ‘emelê ehlê cennetê dike, ta ku navbêna wî û cennetê zendek dimîne, kitêba bihurî (teqdîra ezelî) li ser wî dibe hakim, vêca ew kar û ‘emelê ehlê cehennemê dike û ew diçe cehennemê. Hem yek ji we kar û ‘emelê ehlê cehennemê dike, ta ku navbêna wî û cehennemê zendek dimîne, ew kitêb (ew teqdîra ezelî) dîsa li ser wî dibe hakim, vêca ew bi ‘emelê ehlê cennetê ‘emel dike û diçe cennetê.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٣٩٨- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (يُؤْتَى بِجَهَنَّمَ يَوْمَئِذٍ لَهَا سَبْعُونَ أَلْفَ زِمَامٍ مَعَ كُلِّ

1 Tûr, 52/25-28.

زِمَام سَبْعُونَ أَلْفَ مَلَكٍ يَجُرُّونَهَا) رَوَاهُ مُسْلِم.

398- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ewê rojê cehennem tê anîn ku heftê hezar (70. 000) hefsarê wê hene û bi her hefsarekî re jî heftê hezar milyaket hene ku wê dikişînin." *Muslim rîwayet kiriye.*

٣٩٩- عَنِ النُّعْمَانَ بْنَ بَشِيرٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ أَهْوَنَ أَهْلِ النَّارِ عَذَابًا يَوْمَ الْقِيَامَةِ لَرَجُلٌ تُوضَعُ فِي أَخْمَصِ قَدَمَيْهِ جَمْرَتَانِ يَغْلِي مِنْهُمَا دِمَاغُهُ، مَا يَرَى أَنَّ أَحَدًا أَشَدُّ مِنْهُ عَذَابًا، وَإِنَّهُ لأَهْوَنُهُمْ عَذَاباً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

399- Ji Nu'manê kurê Beşîr (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst digot: "Bêguman siviktirê ku di roja qiyametê de ezab dibîne ew mirov e ku di her du pahniyê lingê wî de du pizotê agir têne danîn, ji ber êşa wan mêjiyê wî mirovî dikele. Ew mirov qey dibe tu kes ji wî zêdetir 'ezabê nabîne. Ya rastî 'ezabê wî siviktirê 'ezabê ehlê cehennemê ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kiriye.*

٤٠٠- عَنْ سَمُرَةَ بْنِ جُنْدَبٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (مِنْهُمْ مَنْ تَأْخُذُهُ النَّارُ إِلَى كَعْبَيْهِ، وَمِنْهُمْ مَنْ تَأْخُذُهُ النَّارُ إِلَى رُكْبَتَيْهِ، وَمِنْهُمْ مَنْ تَأْخُذُهُ النَّارُ إِلَى حُجْزَتِهِ، وَمِنْهُمْ مَنْ تَأْخُذُهُ النَّارُ إِلَى تَرْقُوَتِهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

400- Ji Semurê kurê Cundub (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hinek ji ehlê cehennemê agir heta gwîzekan wan digre, hinek heta çoka wan digre, hinek heta navika wan digre û hinek jî agir û ezab heta bazinê histûyê wan digre." *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٠١- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (يَقُومُ النَّاسُ لِرَبِّ الْعَالَمِينَ حَتَّى يَغِيبَ أَحَدُهُمْ فِي رَشْحِهِ إِلَى أَنْصَافِ أُذُنَيْهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

401- Ji Îbnu 'Umer (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: gotiye: "Wê mirov li ber Rebbê 'alemê (ji gorên xwe) rabin heta hinekê wan di xwêdana xwe de heta nîvê guhê xwe wê winda bibin." *Buxarî û Muslim rîwayet kiriye.*

٤٠٢- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ قَالَ: خَطَبَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ خُطْبَةً مَا سَمِعْتُ مِثْلَهَا قَطُّ،

فَقَالَ: (لَوْ تَعْلَمُونَ مَا أَعْلَمُ لَضَحِكْتُمْ قَلِيلاً وَلَبَكَيْتُمْ كَثِيراً، فَغَطَّى اَصْحَابُ رَسُولِ الله ﷺ وُجُوهَهُمْ وَلَهُمْ خَنِينٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

وَفِي رِوَايَةٍ: بَلَغَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ عَنْ أَصْحَابِهِ شَيْءٌ فَخَطَبَ، فَقَالَ: (عُرِضَتْ عَلَيَّ الْجَنَّةُ وَالنَّارُ، فَلَمْ أَرَ كَالْيَوْمِ فِي الْخَيْرِ وَالشَّرِّ، وَلَوْ تَعْلَمُونَ مَا أَعْلَمُ لَضَحِكْتُمْ قَلِيلاً وَلَبَكَيْتُمْ كَثِيراً) قَالَ فَمَا أَتَى عَلَى أَصْحَابِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ يَوْمٌ أَشَدُّ مِنْهُ، غَطَّوْا رُؤُسَهُمْ وَلَهُمْ خَنِينٌ.

402- Ji Enesê kurê Malik (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji me re xutbeke wisa xwend ku min xutbeke wisa qet nebihîstibû. Resûlê Xwedê (s.) got: Heger tiştê ku ez dizanim we jî bizanîbûya, hûnê hindik bikeniyana û pir bigiriyana. Li ser vê gotinê, eshabê Pêxemberê Xwedê (s.) rûyê xwe girtin/veşartin û bi îskeîskî giriyan. *Buxarî û Muslim rîwayet kiriye.*

Di rîwayeteka dîtir de: Pêxemberê Xwedê (s.) ji halekî sehabiyan agahdar bû. Li ser vê yekê xutbe xwend û got: "Cennet û cehennem ji min re kifş bûn, min ji aliyê xêr û şerê ve rojek nedît ku ji îro gelektir be. Heger we bi tiştê ku ez dizanim bizanîbûya, hûnê hindik bikeniyana û pir bigiriyana. Li ser eshabê Resûlê Xwedê (s.) rojeke ji vê rojê zortir derbas nebûbû û ewana serê xwe girtin/veşartin û bi îskeîskî giriyan.

٤٠٣- عَنِ الْمِقْدَادُ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (تُدْنَى الشَّمْسُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ مِنَ الْخَلْقِ حَتَّى تَكُونَ مِنْهُمْ كَمِقْدَارِ مِيلٍ) قَالَ سُلَيْمُ بْنُ عَامِرٍ، فَوَاللَّهِ مَا أَدْرِي مَا يَعْنِي بِالْمِيلِ: أَمَسَافَةَ الأَرْضِ، أَمِ الْمِيلَ الَّذِي تُكْتَحَلُ بِهِ الْعَيْنُ؟ (فَيَكُونُ النَّاسُ عَلَى قَدْرِ أَعْمَالِهِمْ فِي الْعَرَقِ، فَمِنْهُمْ مَنْ يَكُونُ إِلَى كَعْبَيْهِ، وَمِنْهُمْ مَنْ يَكُونُ إِلَى رُكْبَتَيْهِ، وَمِنْهُمْ مَنْ يَكُونُ إِلَى حَقْوَيْهِ، وَمِنْهُمْ مَنْ يُلْجِمُهُ الْعَرَقُ إِلْجَاماً) وَأَشَارَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِيَدِهِ إِلَى فِيهِ. رَوَاهُ مُسْلِمْ.

403-Ji Mîqdad (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst digot: "Di roja qiyametê de roj bi qasî pîvana mîlekê nêzîkî mexlûqan dibe." Suleymê kurê 'Emr ku rawiyê Mîqdad e got: Wellahî ez nizanim armanca wî ji mîlê çi ye? Mîla pîvana erdê ye û yan jî mîla ku pê kil dikişîne çavan. "Vêca însan anegorî 'emelê xwe li gora kar û 'emelên xwe xwêdan didin. Hinek heta gwîzekê, hinek heta çokê, hinek heta navtengê xwêdan didin û hinek jî xwêdan dikeve devê wan de jê re dibe wekî lixabekê/gemekê. Û Resûlê

Xwedê bi destê xwe îşaretî devê xwe kir." *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٠٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (يَعْرَقُ النَّاسُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ حَتَّى يَذْهَبَ عَرَقُهُمْ فِي الأَرْضِ سَبْعِينَ ذِرَاعًا وَيُلْجِمُهُمْ حَتَّى يَبْلُغَ آذَانَهُمْ) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

404- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin. Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Di roja qiyametê de însan xwêdan didin, heta xwêdana wan heftê zira'en di erdê de diçe xwarê û xwêdana wan ji wan re dibe lixab heta digêje guhê wan." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٠٥- وَعَنْهُ قَالَ: كُنَّا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ إِذْ سَمِعَ وَجْبَةً فَقَالَ: (هَلْ تَدْرُونَ مَا هَذَا؟) قُلْنَا اللَّهُ وَرَسُولُهُ أَعْلَمُ، قَالَ: (هَذَا حَجَرٌ رُمِيَ بِهِ فِي النَّارِ مُنْذُ سَبْعِينَ خَرِيفاً، فَهُوَ يَهْوِي فِي النَّارِ الْآنَ حَتَّى انْتَهَى إِلَى قعرها فَسَمِعْتُمْ وَجْبَتَهَا). رَوَاهُ مُسْلِم.

405- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.), got: Em digel Pêxemberê Xwedê (s.) bûn. Ewî (s.) dengê ketinekê bihîst û got: "Hûn dizanin ev çi bû?" Me got: Xwedê û Pêxemberê wî dizanin. Got: "Ev kevirek bû hatibû avêtin di êgir de, ji beriya heftê (70) payîzan (heftê sala), a niha ew kete agir, heta geheşte binê wê û we jî dengê wî bihîst." *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٠٦- عَنْ عَدِيِّ بْنِ حَاتِمٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا مِنْكُمْ مِنْ أَحَدٍ إِلَّا سَيُكَلِّمُهُ رَبُّهُ لَيْسَ بَيْنَهُ وَبَيْنَهُ تَرْجُمَانٌ، فَيَنْظُرُ أَيْمَنَ مِنْهُ فَلَا يَرَى إِلَّا مَا قَدَّمَ، وَيَنْظُرُ أَشْأَمَ مِنْهُ فَلَا يَرَى إِلَّا مَا قَدَّمَ، وَيَنْظُرُ بَيْنَ يَدَيْهِ فَلَا يَرَى إِلَّا النَّارَ تِلْقَاءَ وَجْهِهِ، فَاتَّقُوا النَّارَ وَلَوْ بِشِقِّ تَمْرَةٍ) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

406- Ji 'Ediyê kurê Hatim (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Di roja qiyametê de her kes ji we, wê Rebbê wî bi wî re bê tercuman biaxive. Vêca wê mirov li aliyê xwe yê rastê binêre ji xeynê tiştê borî tiştekî nabîne, wê li aliyê xwe yê çepê binêre ji xeynê tiştê borî tiştekî nabîne û ewê li beriya xwe binêre pêşberê xwe ji xeynê êgir tu tiştekî nabîne. Vêca hûn, çendan bi qetek xurme be jî, xwe ji agirî biparêzin." *Buxarî û Muslim rîwayet kiriye.*

٤٠٧- عَنْ أَبِي ذَرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنِّي أَرَى مَا لَا تَرَوْنَ، أَطَّتِ السَّمَاءُ وَحُقَّ لَهَا أَنْ تَئِطَّ، مَا فِيهَا مَوْضِعُ أَرْبَعِ أَصَابِعَ إِلَّا وَمَلَكٌ وَاضِعٌ جَبْهَتَهُ سَاجِداً لِلَّهِ، ولَوْ تَعْلَمُونَ مَا أَعْلَمُ لَضَحِكْتُمْ قَلِيلاً وَلَبَكَيْتُمْ كَثِيراً، وَمَا تَلَذَّذْتُمْ بِالنِّسَاءِ عَلَى الْفُرُشِ، وَلَخَرَجْتُمْ إِلَى الصُّعُدَاتِ تَجْأَرُونَ إِلَى اللَّهِ تَعَالَى). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

407- Ji Ebû Zerr (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman tiştê ku hûn nabînin ez dibînim û tiştê ku hûn nizanin ez dizanim. Asîman ji ber ku bi melekan tijî ye kire çîre çîr û heqe ku bike çîre çîr. Lewra di asîmanan de ciyê çar tiliyan vala nemaye, bi teqezî melekekî serê xwe daye ser û ji Xwedê re çûye secdê. Wellahî eger we tiştê ku ez dizanim bizanîbûya hûnê hindik bikeniyana û gelekî bigiriyana û di nav cih de bi jinika kêfxweş nedibûn û hûnê derbiketana serê rêyan weyê feryad û gazî Xwedê bikira." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

٤٠٨- عَنْ أَبِي بَرْزَةَ بن عبيد الأَسْلَمِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَزُولُ قَدَمَا عَبْدٍ يَوْمَ الْقِيَامَةِ حَتَّى يُسْأَلَ عَنْ عُمُرِهِ فِيمَا أَفْنَاهُ، وَعَنْ عَمَلِهِ فِيمَ فَعَلَ، وَعَنْ مَالِهِ مِنْ أَيْنَ اكْتَسَبَهُ وَفِيمَ أَنْفَقَهُ، وَعَنْ جِسْمِهِ فِيمَ أَبْلَاهُ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

408- Ji Ebû Berzeyê kurê 'Ubeydê Eslemî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Di roja qiyametê de heta 'ebd ji van pênc tiştan neyê pirsiyar kirin ji ciyê xwe nâlebite: 1- Ka 'umrê xwe di çi de borandiye? 2- Ka 'emelê xwe çawa kiriye? 3-Ka malê xwe ji kû bidest xistiye? 4- Ka di kû de serf kiriye? 5- Ka bedena xwe di çi de rizandiye." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e û sehîh e.*

٤٠٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَرَأَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (يَوْمَئِذٍ تُحَدِّثُ أَخْبَارَهَا)-الزَّلْزَلَة ٤- قَالَ: (أَتَدْرُونَ مَا أَخْبَارُهَا؟) قَالُوا: اللَّهُ وَرَسُولُهُ أَعْلَمُ، قَالَ: (فَإِنَّ أَخْبَارَهَا أَنْ تَشْهَدَ عَلَى كُلِّ عَبْدٍ أَوْ أَمَةٍ بِمَا عَمِلَ عَلَى ظَهْرِهَا، أَنْ تَقُولَ: عَمِلَ كَذَا وَكَذَا يَوْمَ كَذَا وَكَذَا، فَهَذِهِ أَخْبَارُهَا) رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

409- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ayeta; "Wê rojê erd exbarê xwe dibêje" xwend û got: "Gelo hûn dizanin exbarê wê çi ne?

Gotin: Xwedê û Pêxemberê wî dizanin. Got: "Bêguman exbar û gotinê erdê eva ku şehdebûnê bide ka kî zilamî û yan kîjan jinê li ser pişta wê çi kirine. Dê erd bêje evî 'ebdî filan kar û filan emel di filan rojê de kiriye. Eva exbarê erdê." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e û sehîh e.*

٤١٠- عَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (كَيْفَ أَنْعَمُ، وَصَاحِبُ الْقَرْنِ قَدِ الْتَقَمَ الْقَرْنَ وَاسْتَمَعَ الأَذْنَ مَتَى يُؤْمَرُ بِالنَّفْخِ فَيَنْفُخُ؟) فَكَأَنَّ ذَلِكَ ثَقُلَ عَلَى أَصْحَابِ النَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ لَهُمْ: (قُولُوا: حَسْبُنَا اللَّهُ وَنِعْمَ الْوَكِيلُ) رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

410- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ezê çawa kêfxweş bibim! Hal wekî xwedanê boriyê (Îsrafîl) borî kiriye devê xwe de guhê wî li ser îzna pifkirinê ye. Kêngî emrê pifkirinê bê ewê jî pifî boriyê bike." Vêca her wekî ev gotin li ser eshabê Pêxemberê Xwedê (s.) giran hat. Wî (s.) jî ji wan re got: "Hûn bêjin "Hesbûnellahu we nî'mel-wekîl." (Yanî Xweda besî me ye û xweşwekîl e.)" *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

٤١١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (مَنْ خَافَ أَدْلَجَ، وَمَنْ أَدْلَجَ بَلَغَ الْمَنْزِلَ، أَلَا إِنَّ سِلْعَةَ اللَّهِ غَالِيَةٌ، أَلَا إِنَّ سِلْعَةَ اللَّهِ الْجَنَّةُ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

411- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî bitirse wê bi şev rê here (yanî ihmala îbadet û taetî nake) û kî bi vî awayî bimeşe ewê bigihêje cihê xwe. Hûn agahdar bibin ku pertalê Xwedê biha ye û hûn dîsa agahdar bibin ku pertalê Xwedê ('ezze we celle) jî cennete." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

٤١٢- عَنْ عَائِشَةَ ﷺ، قَالَتْ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ: يَقُولُ: (يُحْشَرُ النَّاسُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ حُفَاةً عُرَاةً غُرْلاً) قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ الرِّجَالُ وَالنِّسَاءِ جَمِيعًا يَنْظُرُ بَعْضُهُمْ إِلَى بَعْضٍ؟ قَالَ: (الأَمْرُ أَشَدُّ مِنْ أَنْ يُهِمَّهُمْ ذلِكَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: (الأَمْرُ أَهَمُّ مِنْ أَنْ يَنْظُرَ بَعْضُهُمْ إِلَى بَعْضٍ).

412- Ji 'Aîşe (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst digot: "Însan di roja qiyametê de pêxas, tazî û nesunnetkirî bêne heşir kirin." Min got: Ya Resûlê Xwedê! Jin û mêr temamê wan wê li hevdu binêrin? Wî (s.) got:

"Ey 'Aîşe! Îş, ji 'eleqedarbûna bi vê yekê girantir e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîweyetekê din de "emir, muhîmtire ji nêrîna li hevdu."

## بَابُ الرَّجَاء

## HÊVÎDARÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿قُلْ يَا عِبَادِىَ الَّذِينَ أَسْرَفُوا عَلَى أَنْفُسِهِمْ لَا تَقْنَطُوا مِنْ رَحْمَةِ اللَّهِ إِنَّ اللَّهَ يَغْفِرُ الذُّنُوبَ جَمِيعاً إِنَّهُ هُوَ الْغَفُورُ الرَّحِيمُ﴾

"Tu bêje: Ey 'îbadê min yê ku di kirina gunehan de zêde pêşve diçin! Hûn ji rehma Xwedê bê hêvî nebin. Lewra bêguman Xweda (c. c) hemû gunehan dibexişîne. Bêguman ew xefûr û rehîm e."[1]

﴿وَهَلْ نُجَازِى إِلَّا الْكَفُورَ﴾

"Em qey ji xeynê nankorî tu kesî ceza dikin." (Naxêr em ceza nakin.)[2]

﴿إِنَّا قَدْ أُوحِىَ إِلَيْنَا أَنَّ الْعَذَابَ عَلَى مَنْ كَذَّبَ وَتَوَلَّى﴾

"Bêguman ji me re hatiye wehî kirin ku 'ezabê Xwedê ji kesê derewker û reddkerê heqiyê re ye." [3]

﴿وَرَحْمَتِي وَسِعَتْ كُلَّ شَيْءٍ﴾

"Rehma min her tişt qirtiye nava xwe."[4]

٤١٣- عَنْ عُبَادَةَ بْنِ الصَّامِتِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ شَهِدَ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ وَحْدَهُ لَا شَرِيكَ لَهُ، وَأَنَّ مُحَمَّدًا عَبْدُهُ وَرَسُولُهُ وَأَنَّ عِيسَى عَبْدُ اللَّهِ وَرَسُولُهُ وَكَلِمَتُهُ أَلْقَاهَا إِلَى مَرْيَمَ وَرُوحٌ مِنْهُ، وَالْجَنَّةُ حَقٌّ، وَالنَّارُ حَقٌّ، أَدْخَلَهُ اللَّهُ الْجَنَّةَ عَلَى مَا كَانَ مِنَ الْعَمَلِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

413- Ji 'Ubadeyê kurê Samit (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ew

1 Zumer, 39/53.
2 Sebe, 34/17.
3 Taha, 20/48.
4 E'raf, 7/156.

kesê şehadetê bîne, bi zimanê xwe bawer bike, bi dilê xwe ku ji xeynê Xwedê tu îlah tunîne û (di zat û sifetên xwe de) bi tenê bûye û şirîk û hevalên wî tunîne û hem şehadetê bîne ku Muhemmed jî ‘ebd û qasidê wî ye û bêguman Îsa (e.) jî ‘ebd û Resûlê Xwedê ye û kelîma wî ye ku daye Meryemê û ew (s.) rûhek e ji aliyê Xwedê ve û bawer bike cennet û cehennem heq in, wê Xwedê wî kesî bi anegorê ‘emelê wî bibe cennetê.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤١٤- عَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (يَقُولُ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ: مَنْ جَاءَ بِالْحَسَنَةِ فَلَهُ عَشْرُ أَمْثَالِهَا أوأَزِيدُ، وَمَنْ جَاءَ بِالسَّيِّئَةِ فَجَزَاءُ سَيِّئَةٍ سَيِّئَةٌ مِثْلُهَا، أَوْ أَغْفِرُ، وَمَنْ تَقَرَّبَ مِنِّي شِبْراً تَقَرَّبْتُ مِنْهُ ذِرَاعاً، وَمَنْ تَقَرَّبَ مِنِّي ذِرَاعاً تَقَرَّبْتُ مِنْهُ بَاعاً، وَمَنْ أَتَانِي يَمْشِي أَتَيْتُهُ هَرْوَلَةً، وَمَنْ لَقِيَنِي بِقُرَابِ الأَرْضِ خَطِيئَةً لَا يُشْرِكُ بِي شَيْئاً لَقِيتُهُ بِمِثْلِهَا مَغْفِرَةً). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

414- Ji Ebû Zerr (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Xwedê (c. c) dibêje “Kesê bi xêrekê were ji wî re deh carê wê heye û yan hê zêde. “Kesê bi gunehekî were cezayê guneh bi qasî guneh e,” û yan jî ezê wî gunehî bibexşînim. Kesê ku bi bihustekî nêzîkî min bibe ezê bi zira‘ekî nêzîkî wî bibim û kesê zira‘ekî nêzîkî min bibe ezê qulacekî nêzîkî wî bibim. Kesê bi meş were cem min ezê bi baz herim cem wî û kesê ku biqasî tijîbûna erdê bi gunehan were hizûra min, lêbelê ji min re şirîk çênekiribe ezê wekî gunehê wî bi bexişandinê bikevim pêşberê wî.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٤١٥- عَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: جَاءَ أَعْرَابِيٌّ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ مَا الْمُوجِبَتَانِ؟ فَقَالَ: (مَنْ مَاتَ لَا يُشْرِكُ بِاللَّهِ شَيْئًا دَخَلَ الْجَنَّةَ، وَمَنْ مَاتَ يُشْرِكُ بِاللَّهِ شَيْئاً دَخَلَ النَّارَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

415- Ji Cabir (r.), got: Mirovekî bedewî hate cem Pêxember (s.) û got: Ya Resûlê Xwedê! Ew tiştê ku (cennet û cehennemê) wacib dikin çi ne? Resûlê Xwedê got: “Her kesê ku bimre û tu şirîk ji bo Xwedê çênekiribe, ewê here cennetê û ew kesê ku bimre û ji bona Xwedê te‘ala jî şirîk û heval çêkiribin ewê bikeve êgir.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٤١٦- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ وَمُعَاذٌ رَدِيفُهُ عَلَى الرَّحْلِ، قَالَ: (يَا مُعَاذُ)

قَالَ: لَبَّيْكَ يَا رَسُولَ اللَّهِ وَسَعْدَيْكَ، قَالَ: (يَا مُعَاذُ) قَالَ: لَبَّيْكَ يَا رَسُولَ اللَّهِ وَسَعْدَيْكَ- ثَلَاثًا- قَالَ: (مَا مِنْ عَبْدٍ يَشْهَدُ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ وَأَنَّ مُحَمَّدًا عَبْدُهُ وَرَسُولُهُ صِدْقًا مِنْ قَلْبِهِ إِلَّا حَرَّمَهُ اللَّهُ عَلَى النَّارِ) قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَفَلَا أُخْبِرُ بِهِ النَّاسَ فَيَسْتَبْشِرُوا؟ قَالَ: (إِذًا يَتَّكِلُوا) وَأَخْبَرَ بِهَا مُعَاذٌ عِنْدَ مَوْتِهِ تَأَثُّماً. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

416- Ji Enesê kurê Malik (r.) hatiye rîwayetkirin. Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) û Mu'azê kurê Cebel jî li paş wî li eynî devê siwar bûbû. Ewî (s.) got: Ya Mu'az! Mu'az got: Keremke ya Resûlê Xwedê. Dîsa wî (s.) got: Ya Mu'az! Ewî dîsa got: Keremke ya Resûlê Xwedê! Resûlê Xwedê dîsa got: Ya Mu'az! Muaz got: Keremke ya Resûlê Xwedê! Sê caran tekrar kir. Resûlê Xwedê got: Ew 'ebdê ku birastî ji dilê xwe şehadetê bide ku ji xeynê Xwedê tu îlah tunîne û bêguman Muhemmed jî 'ebd û qasidê wî ye wê Xwedê ('ezze we celle) êgir li ser wî, heram bike. Mu'az got: Ya Pêxemberê Xwedê! Gelo ez însanan bi vê gotinê agahdar nekim? Da ku pê kêfxweş bibin. Wî (s.) got: Heger tu vê bibêjî wî wextî dê însan xwe bispêrinê û êdî kar û 'emelê baş nakin. Vêca Mu'az (r.) wextê wefata xwe însan bi vê gotinê agahdar kir da ku biveşartina zanînê (bi ketma 'ilmê) xwedanguneh nebe. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤١٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ أَوْ أَبِي سعيدٍ الخُدْرِيِّ ﷺ شَكَّ الرَّاوِي، وَلا يَضُرُّ الشَّكُّ فِي عَيْنِ الصَّحابيِّ، لأنهم كُلَّهُمْ عُدُولٌ، قَالَ: لَمَّا كَانَ غَزْوَةُ تَبُوكَ أَصَابَ النَّاسَ مَجَاعَةٌ فَقَالُوا: يَا رَسُولَ الله لَوْ أَذِنْتَ لَنَا فَنَحَرْنَا نَوَاضِحَنا، فَأَكَلْنَا وَأدَّهَنّا، فقالَ رَسُولُ الله ﷺ: (افْعَلُوا) فَجَاءَ عُمَرُ ﷺ فقالَ: يا رَسُولَ الله إنْ فَعَلْتَ قَلَّ الظَّهْر، وَلكِن ادْعُهُمْ بفَضْلِ أَزْوَادِهِمْ، ثُمَّ ادْعُ الله لَهُمْ عَلَيْهَا بِالبَرَكَةِ، لَعَلَّ الله أَنْ يَجْعَلَ لهم فِي ذلِكَ البَرَكَةَ، فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (نَعَمْ) فَدَعَا بِنِطعٍ فَبَسَطَهُ، ثُمَّ دَعَا بِفَضْلِ أَزْوَادِهِمْ، فَجَعَلَ الرَّجُلُ يجيءُ بِكَفِّ ذُرَةٍ، وَيجيءُ الآخَرُ بِكَفِّ تَمْرٍ، ويجيءُ الآخَرُ بِكسرَةٍ حَتَّى اجْتَمَعَ عَلَى النِّطَعِ مِنْ ذلِكَ شَيْءٌ يَسِيرٌ، فَدَعَا رَسُولُ الله ﷺ عَلَيْهِ بالبَرَكَةِ، ثُمَّ قَالَ: (خُذُوا فِي أَوْعِيَتِكُمْ) فَأَخَذُوا فِي أَوْعِيَتِهِمْ حَتَّى ما تَرَكُوا فِي العَسْكَرِ وِعَاءً إِلَّا مَلؤوه، وَأَكَلُوا حَتَّى شَبِعُوا وَفَضَلَ فَضْلَةٌ،

فقالَ رَسُولُ الله ﷺ: (أَشْهَدُ أَنْ لَا إِله إِلَّا الله وأَنّي رَسُولُ الله، لَا يَلْقَى الله بِهِمَا عَبْدٌ غَيْرَ شاكٍّ فَيُحْجَبَ عَنِ الجَنَّةِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

417- Ji Ebû Hureyre –yan jî ji Ebû Se'îdê Xudrî– (r.), rawî dudil maye lêbelê dudiliya di eshab bi xwe de zerar nake. Lewra bêguman eshab hemû xwedan'edalet in, got: Roja herba Tebûkê birçîbûn li eshaban peyda bû. Li ser vê yekê eshaban gotin: Ya Resûlê Xwedê! Heger tu îzna me bidî emê devehê xwe yên ku em avê bi wan tînin serjêbikin û goştê wan bixwûn û ji dohnê wan jî feydê bibînin. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: Bikin. Vêca Hz. 'Umer (r.) hat û got: Ya Resûlê Xwedê! Heger hûn wisa bikin wê heywanê siwarbûnê kêm bibin. Lêbelê hûn gazî sehabiyan bikin bila xwarina xwe ya zêde bînin û hûn jî ji wan re li ser wê xwarinê dua bereketê bixwînin em hêvîdar in ku Xwedê te'ala bereketa xwe bixe nav wê xwarinê. Pêxemberê Xwedê (s.) got: Belê emê wisa bikin. Bestireke ji çerm anîn û raxistin, paşê gazî kir ku ew xwarinê xwe yê zêdemaye bînin. Li ser vê yekê mirovekî kulmek şilêl anî û yekî çengek xurme anî û yekê dîtir qetek nan anî heta li ser wî postî ji wî zadî tiştek hindik kom bû. Pêxemberê Xwedê (s.) li ser wî zadî dua bereketê xwend û paşê got: Evna bixine firaxê xwe, ewna jî firaxê xwe tijîkirin heta di nav leşker de firaxeka ne tijîkirî nema û ewana xwarin, heta têr bûn û ji ber jî tiştek zêde ma. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: Ez şehadetê didim ku ji xeynê Xwedê tu îlah tunîne û bêguman ez jî qasidê wî me. Kesê bêdudilî bi van her du baweriyan here hizûra Xwedê ('ezze we celle) qey mumkine ew ji cennetê bê men' kirin? *Muslim rîwayet kiriye.*

٤١٨- عَنْ عِتْبَانَ بنِ مالكٍ ﷺ وهو ممَّنْ شَهِدَ بَدْراً، قالَ: كُنْتُ أُصَلِّي لِقَوْمِي بَنِي سالِمٍ، وَكَانَ يَحُولُ بَيْنِي وَبَيْنَهُمْ وَادٍ إذَا جَاءتِ الأَمْطَارُ فَيَشُقُّ عَلَيَّ اجْتِيَازُهُ قِبَلَ مَسْجِدِهِمْ، فَجِئْتُ رَسُولَ الله ﷺ فقُلْتُ له: إنِّي أَنْكَرْتُ بَصَرِي، وَإِنَّ الوَادِيَ الَّذِي بَيْنِي وبَيْنَ قَوْمِي يَسِيلُ إذا جَاءتِ الأَمطَارُ فَيَشُقّ عَلَيَّ اجْتِيازُهُ فَوَدِدْتُ أَنّكَ تَأْتي فتُصَلِّي فِي بَيْتي مَكاناً أَتَّخِذُه مُصَلّى، فقال رَسُولُ اللّهِ ﷺ: (سَأَفْعَلُ) فَغَدَا عليَّ رَسُولُ الله، وأَبُو بَكْرٍ ﷺ بَعْدَ ما اشْتَدَّ النَّهارُ، وَاسْتَأْذَنَ رَسُولُ الله ﷺ فَأَذِنْتُ لهُ فَلَمْ يَجْلِسْ حَتَّى قالَ: (أَيْنَ تُحِبُّ أَنْ أُصَلِّيَ منْ بَيْتِكَ؟) فَأَشَرْتُ لَهُ إِلَى المكانِ الَّذِي أُحِبُّ أَنْ يَصلِّيَ فِيه، فقَامَ رَسُولُ الله

ﷺ فَكَبَّرَ وَصَفَفْنَا وَراءهُ فَصَلَّى رَكْعَتَيْنِ ثُمَّ سلَّمَ وَسَلَّمْنَا حِينَ سَلَّمَ، فَحَبَسْتُهُ عَلَى خَزيرةٍ تُصْنَعُ لَهُ، فَسمعَ أَهْلُ الدَّارِ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فِي بَيتي، فثَابَ رِجالٌ مِنهمْ حَتَّى كَثُرَ الرِّجالُ فِي البَيْتِ، فقال رَجُل: مَا فَعَلَ مَالِك لا أَرَاهُ، فَقَالَ رَجُل: ذلِكَ مُنَافِق لا يُحِبُّ اللَّهَ وَرَسُولَهُ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لا تَقُلِ ذلِك، أَلا تَرَاهُ قَالَ: لا إِلهَ إِلا اللَّهُ يَبْتَغِي بِذَلِكَ وَجْهَ اللَّهِ تَعَالَى) فَقَالَ: اللَّهُ وَرَسُولُهُ أَعْلَمُ، أَمَّا نَحْنُ فَوَالله مَا نَرَى وُدَّهُ وَلَا حَدِيثَهُ إِلاَ إِلَى المُنَافِقينَ، فقالَ رَسُولُ الله ﷺ: (فَإِنَّ الله قَدْ حَرَّمَ عَلَى النَّارِ مَنْ قَالَ: لا إله إِلَّا الله يَبْتَغِي بِذلِكَ وَجْهَ الله). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

418-Ji 'Itbanê kurê Malik (r.), –ew jî ji wan kesa ye ku beşdarî cenga Bedrê bûye– got: Min li pêşiya qewmê xwe Benî Saliman nimêj dikir. Wextê baran bibariya, çemek dikete navbêna min û wan de. Vêca derbasbûna min ji wî çemî ku ez biçime mizgefta wan li ser min zehmet dibû. Li ser vê yekê ez hatim cem Pêxemberê Xwedê (s.) û min jê re got: Ya Resûlê Xwedê, çavê min baş nabînin û bêguman ev newala ku navbêna min û qewmê min de wextê baran dibare diherike û vêca zehmet dibe ku ez derbasî wî alî bibim. Vêca ez dixwazim ku hûn werin di cihekî mala min de nimêj bikin ku ez wî cihî bikim "nimêjgeh". Pêxemberê Xwedê (s.) got: Ezê werim. Sibetirê Pêxemberê Xwedê (s.) û Ebû Bekirê Siddîq (r.) piştî ku roj bilind bû hatin cem me. Pêxemberê Xwedê (s.) îzna ketina malê ji min xwest, min jî izin da. Pêxemberê Xwedê kerem kir, lêbelê rûnenişt û got: Ka tu kîjan ciyê mala xwe hezdikî ez li wê derê nimêj bikim? Min jî ew cihê ku min hezdikir ku ew lê nimêj bike nişan da. Vêca Pêxemberê Xwedê rabû tekbîr anî û me jî li pişt wî sef girt, du rek'et nimêj kir paşê selam da, wextê ewî selam da me jî selam da. Ji bo Resûlê Xwedê (s.) hewdel[1] hatibû amade kirin, ji bo vê me nehişt ku Resûlê Xwedê vegere. Miletê taxê bihîstin ku Pêxemberê Xwedê (s.) teşrîfa mala me kiriye hatin û tijî malê bûn. Mirovekî pirsiyar kir û got: Malik çi dike, ez wî nabînim? Mirovekî din jî got: Ew munafiq e, ji Xwedê û ji Pêxemberê wî heznake. Li ser vê gotinê Pêxemberê Xwedê (s.) got: Tu wisa nebêje, qey tu nizanî ku wî gotiye la îlahe îllellah û bi vê jî qesd û niyeta wî razîbûna Xwedê ye? Ewî mirovî got: Xwedê û Pêxemberê wî rindtir dizanin, lêbelê wellahî hezjêkirina wî û axaftina wî ji xeynê munafiqa re em nizanin. Pêxemberê

1 **hewdel**: Şorba ard.

  

Xwedê (s.) got: Bêguman Xweda ('ezze we celle) li ser agir heram kiriye ku kesê bêje la îlahe îllellah Muhemmedun resûlullah û qesd û niyeta wî bi vê, razîbûna Xwedê be. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤١٩- عَنْ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ ﷺ قال: قَدِمَ عَلَى النَّبِيِّ ﷺ بِسَبْيٍ فَإِذَا امْرَأَةٌ مِنَ السَّبْيِ، إِذَا وَجَدَتْ صَبِيّاً فِي السَّبْيِ أَخَذَتْهُ فَأَلْزَقَتْهُ بِبَطْنِهَا وَأَرْضَعَتْهُ، فَقَالَ لَنَا النَّبِيُّ ﷺ: (أَتَرَوْنَ هَذِهِ الْمَرْأَةَ طَارِحَةً وَلَدَهَا فِي النَّارِ؟) قُلْنَا: لَا وَاللَّهِ، فَقَالَ: (اللَّهُ أَرْحَمُ بِعِبَادِهِ مِنْ هَذِهِ بِوَلَدِهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

419- Ji 'Umerê kurê Xettab (r.), got: Rojekê hinek hatin anîn ba Pêxemberê Xwedê (s.), jinikek ji wan hêsîran direvî diçû û dihat; wextê ewê di nav hêsîran de zarokek bidîta ew zarok digirt û bi zikê xwe ve dizeliqand û dimêjand. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Hûn bawer dikin ku ev jinik zaroka xwe bavêje êgir? Me got: Naxêr wellahî. Vêca Resûlê Xwedê got: Xwedê ('ezze we celle) rehma wî bi 'îbadê wî re ji rehma vê jinikê bi zaroka wê re zehftir e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٢٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَمَّا خَلَقَ اللَّهُ الْخَلْقَ كَتَبَ فِي كِتَابٍ، فَهُوَ عِنْدَهُ فَوْقَ الْعَرْشِ: إِنَّ رَحْمَتِي تَغَلَبَتْ غَضَبِي)

وَفِي رِوَايَةٍ: (غَلَبَتْ غَضَبِي).

وَفِي رِوَايَةٍ: (سَبَقَتْ غَضَبِي). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

420- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê Xwedê ('ezze we celle) kaînat afirand, di kitêbeke cem xwe de, ku li ser 'erşê nivîsî: "Bêguman rehma min serdestiyê li xezeba min dike."

Di rîwayetekê de: "Li ser xezeba min ketiye".

Di rîwayeteke dîtir de: "Ji xezeba min boriye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٢١- وَعَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (جَعَلَ اللَّهُ الرَّحْمَةَ مِائَةَ جُزْءٍ، فَأَمْسَكَ عِنْدَهُ تِسْعَةً وَتِسْعِينَ جُزْءاً وَأَنْزَلَ فِي الأَرْضِ جُزْءاً وَاحِداً، فَمِنْ ذَلِكَ الْجُزْءِ يَتَرَاحَمُ الْخَلائِقُ، حَتَّى تَرْفَعَ الدَّابَّةُ حَافِرَهَا عَنْ وَلَدِهَا خَشْيَةَ أَنْ تُصِيبَهُ).

وَفِي رِوَايَةٍ: (إِنَّ لِلهِ مِائَةَ رَحْمَةٍ أَنْزَلَ مِنْهَا رَحْمَةً وَاحِدَةً بَيْنَ الْجِنِّ وَالْإِنْسِ وَالْبَهَائِمِ وَالْهَوَامِّ، فَبِهَا يَتَعَاطَفُونَ، وَبِهَا يَتَرَاحَمُونَ، وَبِهَا تَعْطِفُ الْوَحْشُ عَلَى وَلَدِهَا، وَأَخَّرَ اللَّهُ تِسْعًا وَتِسْعِينَ رَحْمَةً يَرْحَمُ بِهَا عِبَادَهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِيُّ وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ أيضاً، مِنْ رواية سَلْمَانَ الْفَارِسِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ لِلَهِ مِائَةَ رَحْمَةٍ، فَمِنْهَا رَحْمَةٌ بِهَا يَتَرَاحَمُ الْخَلْقُ بَيْنَهُمْ وَتِسْعَةٌ وَتِسْعُونَ لِيَوْمِ الْقِيَامَةِ).

وَفِي رِوَايَةٍ: (إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى خَلَقَ يَوْمَ خَلَقَ السَّمَاوَاتِ وَالأَرْضَ مِائَةَ رَحْمَةٍ، كُلُّ رَحْمَةٍ طِبَاقَ مَا بَيْنَ السَّمَاءِ وَالأَرْضِ، فَجَعَلَ مِنْهَا فِي الأَرْضِ رَحْمَةً فَبِهَا تَعْطِفُ الْوَالِدَةُ عَلَى وَلَدِهَا، وَالْوَحْشُ وَالطَّيْرُ بَعْضُهَا عَلَى بَعْضٍ، فَإِذَا كَانَ يَوْمُ الْقِيَامَةِ أَكْمَلَهَا بِهَذِهِ الرَّحْمَةِ).

421- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Xwedê (c.c.) rehma xwe kiriye sed (100) parçe, nod û neh (99) parçe li ba xwe hiştiye, yek parçe şandiye ser rûyê erdê. Ji wî parçê rehmetê mexlûqat rehmê li hevdu dikin. Heta dewar ji tirsa ku lênekeve lingê xwe ji cehşika xwe dûr digire.”

Di rîwayetekê de: “Bêguman ji Xwedê (‘ezze we celle) re sed (100) rehmet hene. Ji wan sed rehmetî rehmetek şandiye di navbêna cin û îns û heywanat û heşeratan. Ew bi wî yek rehmetê mêla hevdu dikin û bi wê li hevdu dilovanî dikin û bi wî heywanê wehşî mêl û şefqetê li ferxikê xwe dikin. Xwedê (‘ezze we celle) nod û neh (99) rehmet jî paş ve hiştine, wê bi wan di roja qiyametê de rehmê li ‘îbadê xwe bike.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayeteke dîtir a Muslim de dîsa ji rîwayeta Selmanê Farisî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Bêguman ji Xwedê (‘ezze we celle) re sed (100) rehmet hene. Ji ewî sed rehmetî rehmetek heye ku bi wê rehmetê mexlûq rehmetê li hevdu dikin. Nod û neh (99) rehmet jî ji bona roja qiyametê ne.”

Di rîwayeteke dîtir de: “Bêguman Xweda te‘ala roja ku erd û asîman afirand, sed (100) rehmet jî afirand. Her rehmetek qasî tijîbûna navbêna erd û asîmana ye. Ji wan sed rehmetan rehmetek daniye erdê. Vêca bi wê rehmetê dayik şefqetê li zarokê xwe dike û heywanê wehşî û teyr hinek ji wan şefqetê li hevdu dikin. Wextê roja qiyametê hat, wê Xwedê (c.c.) wan nod û neh (99) rehmetan bi vê rehmetê temam bike.”

٤٢٢- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ فِيمَا يَحْكِي عَنْ رَبِّهِ تَبَارَكَ وَتَعَالَى قَالَ: (إِذَا أَذْنَبَ عَبْدٌ ذَنْبًا فَقَالَ: اَللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي ذَنْبِي، فَقَالَ اللَّهُ تَبَارَكَ وَتَعَالَى: أَذْنَبَ عَبْدِي ذَنْباً فَعَلِمَ أَنَّ لَهُ رَبّاً يَغْفِرُ الذُّنُوبَ وَيَأْخُذُ بِالذَّنْبِ، ثُمَّ عَادَ فَأَذْنَبَ فَقَالَ: أَيْ رَبِّ اغْفِرْ لِي ذَنْبِي، فَقَالَ تَبَارَكَ وَتَعَالَى: أَذْنَبَ عَبْدِي ذَنْباً فَعَلِمَ أَنَّ لَهُ رَبّاً يَغْفِرُ الذَّنْبَ وَيَأْخُذُ بِالذَّنْبِ، ثُمَّ عَادَ فَأَذْنَبَ، فَقَالَ: أَيْ رَبِّ اغْفِرْ لِي ذَنْبِي، فَقَالَ تَبَارَكَ وَتَعَالَ: أَذْنَبَ عَبْدِي ذَنْباً فَعَلِمَ أَنَّ لَهُ رَبّاً يَغْفِرُ الذَّنْبَ وَيَأْخُذُ بِالذَّنْبِ، قَدْ غَفَرْتُ لِعَبْدِي، فَلْيَفْعَلْ مَا شَاءَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

422- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) ewî jî ji Rebbê xwe Tebareke û te'ala rîwayet kiriye, gotiye: "Wextê 'ebd gunehekî bike û bêje: "Ellahumme îxfîrlî zenbî. (Ya Xwedayê min, tu gunehê min bibexişîne)." Xwedê Tebareke û te'ala dibêje: "Ebdê min gunehek kir. Lêbelê dizane ku Rebbekî wî heye gunehan dibexşîne û bi sedem gunehan ceza dide. Paşê dîsa 'ebd gunehekî dike û dîsa dibêje: "Ya Rebbê min, tu min bibexşînî. Xwedê Tebareke û te'ala dîsa dibêje: "Ebdê min gunehek kir. Lêbelê dizane ku Rebbekî wî heye gunehan dibexşîne û bi sedem gunehan ceza dide û min jî 'ebdê xwe bexişand, vêca çi dixwaze bila bike. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٢٣- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ لَوْ لَمْ تُذْنِبُوا لَذَهَبَ اللَّهُ بِكُمْ، وَجَاءَ بِقَوْمٍ يُذْنِبُونَ فَيَسْتَغْفِرُونَ اللَّهَ فَيَغْفِرُ لَهُمْ). رَوَاهُ مُسْلِم.

423- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ez sond dixwim bi wî Xwedayê ku nefsa min di destê wî de ye, eger we guneh nekirana wê Xwedê hûn bibirana (bimirandana) û di şûna we, wê qewmekî din bianiya ku ewan guneh bikirana û vêca daxwaza bexişandinê ji Xwedê bikirana û Xwedê jî ew bibexişandana." *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٢٤-وَعَنْ أَبِي أَيُّوب الأَنْصَارِيِّ خَالِد بن زَيْد ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (لَوْلَا أَنَّكُمْ تُذْنِبُونَ لَخَلَقَ اللَّهُ خلْقاً يُذْنِبُونَ فَيَسْتَغْفِرُونَ فَيَغْفِرُ لَهُم). رَوَاهُ مُسْلِم.

424-Ji Ebû Eyyûbê Ensarî Xalidê kurê Zeyd (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Heger we guneh nekiriba wê Xwedê aferîdek/mexlûqek biafiranda ku gunehan bikin û ji Xwedê bexişandinê bixwazin û Xwedê ('ezze we celle) jî ewan bibexşîne." *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٢٥- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَة ﷺ قَالَ: كُنَّا قُعُوداً مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ مَعَنَا أَبُو بَكْرٍ وعُمَرُ ﷺ فِي نَفَرٍ، فَقَامَ رَسُولُ الله ﷺ مِنْ بَيْنِ أَظْهُرِنَا فَأَبْطَأَ عَلَيْنَا فَخَشِينَا أَنْ يُقْتَطَعَ دُوننا، فَفَزِعْنَا، فَقُمْنَا فَكُنْتُ أَوَّلَ مَنْ فَزِعَ، فَخَرَجْتُ أَبْتَغِي رَسُولَ الله ﷺ حَتَّى أَتَيْتُ حَائِطاً لِلأَنْصَارِ وَذَكَرَ الحَدِيثَ بطُولِه إِلَى قوله: فقال رَسُولُ الله ﷺ: (اذْهَبْ فَمَنْ لَقِيتَ وَرَاءَ هذَا الحَائِطِ يَشْهَدُ أَنْ لا إله إِلَّا الله مُسْتَيْقِناً بِهَا قَلْبُهُ فَبَشِّرْهُ بالجَنَّةِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

425- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Em digel Pêxemberê Xwedê (s.) rûniştibûn û bi me re Ebû Bekir û 'Umer (r.) jî bi hinek mirovê din re rûniştibûn. Pêxemberê Xwedê (s.) ji nav me rabû û çû û vegera wî dereng ket. Em tirsiyan ku tiştek hatibe serê Pêxemberê Xwedê (s.), em ketin teşqelê û em rabûn. Yê pêştir tirsiya ez bûm. Ez derketim û li Pêxemberê Xwedê (s.) geriyam, heta ez hatim cem sûreke Ensariyan. (Rawî hedîs bidirêjaya wê zikir kir heta ba evê gotina Resûlê Xwedê). Veca Pêxemberê Xwedê (s.), ji Ebû Hureyre re got: "Tu here û pişt vî dîwarî kî rastî te were û bi can û dil bêje "La îlahe îllellah" tu mizgîniya cennetê bidiyê. *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٢٦- وَعَنْ عبد الله بن عَمْرو بن العاص ﷺ أن النبيَّ ﷺ تَلا قَوْلَ اللَّهِ عَزَّ وَجَلَ فِي إِبْرَاهِيمَ ﷺ: (رَبِّ إِنَّهُنَّ أَضْلَلْنَ كَثِيراً مِنَ النَّاسِ فَمَنْ تَبِعَنِي فَإِنَّهُ مِنِّي)- إِبْرَاهِيم٣٦- وَقَوْلَ عِيسَى ﷺ: (إِنْ تُعَذِّبْهُمْ فَإِنَّهُمْ عِبَادُكَ وَإِنْ تَغْفِرْ لَهُمْ فَإِنَّكَ أَنْتَ العَزِيزُ الحَكِيمُ)- الْمَائِدَة١١٨ - فَرَفَعَ يَدَيْه وقال: (اللَّهمَّ أُمَّتِي أُمَّتِي وَبكَى، فقال الله عَزَّ وَجَلَّ: يَا جبريلُ اذْهَبْ إِلَى مَحَمَّدٍ، وَرَبُّكَ أَعْلَمُ، فَسَلْهُ مَا يُبْكِيهِ؟ فَأَتَاهُ جبريلُ فَأَخْبَرَهُ رَسُولُ الله بِمَا قالَ، وَهو أَعْلَمُ، فقالَ الله تَعَالَى: يَا جِبريلُ اذهَبْ إِلَى مُحَمَّدٍ فَقُلْ: إِنَّا سَنُرضِيكَ فِي أُمَّتِكَ وَلا نَسُوؤكَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

426- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.), hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) ev ayeta hanê ya ku di derbarê Hz. Îbrahîm (s.) de nazil bûye xwend: "Rebbê min, ev pûtên ha gelek mirov birine delaletê, lêbelê ew kesê ku bibe tabi'ê min ew ji min e..." û ev gotina Hz. Îsa (e.):

“Heger tu wan ezab bikî, bêguman ew ‘ebdê te ne, eger tu wan bibexişînî bêguman tu ‘ezîz î û hekîm î. Piştre Pêxemberê Xwedê (s.) her du destê xwe rakir û got: “Ya Xwedayê min, ummeta min, ummeta min,” û giriya. Li ser vê yekê Xwedê ‘ezze we celle got: “Ey Cibrîl, tu here cem Muhemmed (s.) û rebbê te bi rewşa wî agah e, jê pirsiyar bike ka çi tiştî ew daye giriyandin. Vêca Cibrîl hate cem Pêxemberê Xwedê (s.), ewî (s.) sedema giriyê xwe jê re got û ew jî pê agahdar bû. Li ser vê yekê Xwedayê te‘ala got: Ey Cibrîl tu here cem Muhemmed û jê re bêje: “Bêguman emê te derbarê ummeta te de razî bikin û em te şermezar nakin.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٢٧- وَعَنْ مُعَاذِ بنِ جَبَلٍ ﷺ قَالَ: كُنْتُ رِدْفَ النَّبِيِّ ﷺ عَلَى حِمَارٍ فَقَالَ: (يَا مُعَاذ هَل تَدْرِي مَا حَقّ الله عَلَى عِبَادِهِ، ومَا حَقُّ الْعِبادِ عَلَى اللَّهِ) قُلْتُ: الله وَرَسُولُه أَعْلَمُ، قال: (فَإِنَّ حَقَّ الله عَلَى العِبَادِ أَنْ يَعْبُدُوهُ وَلا يُشْرِكُوا بِهِ شَيْئاً، وَحَقَّ العِبَادِ عَلَى الله أَنْ لَا يُعَذِّبَ مَنْ لَا يُشرِكُ بِهِ شَيْئاً) فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ الله أَفَلا أُبَشِّرُ النَّاسَ؟ قال: (لا تُبَشِّرْهُمْ فَيَتَّكِلُوا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

427- Ji Mu‘azê kurê Cebel (r.), got: Ez li ser kerekî li paş Pêxemberê Xwedê (s.) siwar bûbûm. Ewî (s.) got: “Ya Mu‘az, tu dizanî heqê Xwedê li ser ‘ebdê wî ye û heqê ‘ebdan jî li ser wî çi ye? Min got: Xwedê û Pêxemberê çêtir dizanin. Ewî (s.) got: Bêguman heqê Xwedê li ser ‘ebdê wî ev e ku ‘ebd îbadetî wî bikin û tu şirîkan jê re çênekin. Heqê ‘ebdan jî li ser Xwedê ev e ku Xwedê te‘ala ‘ezabê nede wan kesên ku jê re şirîk çênekirine. Mu‘az dibêje min got: “Ya Resûlê Xwedê, gelo ez mizgîniyê nedime însanan? Ewî (s.) got: “Tu mizgîniyê nede wan, lewra ewê xwe bispêrine evê (û kar û ‘emelê baş nakin).” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٢٨- وَعَنِ الْبَرَاءِ بن عَازِبٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (المُسلِمُ إِذَا سُئِلَ فِي القَبْرِ يَشْهَدُ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ، وَأَنَّ مُحَمَّداً رَسُولُ اللَّهِ، فَذلِكَ قَوْلُهُ تَعَالَى: (يُثَبِّتُ اللَّهُ الَّذِينَ آمَنُوا بِالْقَوْلِ الثَّابِتِ فِي الحَيَاةِ الدُّنْيَا وَفِي الآخِرَةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

428- Ji Beraê kurê ‘Azib (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Misilman wextê di qebrê de tê pirsiyar kirin şehadetê dide ku ji xeynê Xwedê tu

ilah tune û dîsa şehadetê dide ku Hz. Muhemmed jî qasidê Xwedê ye. Eva maneya vê gotina Xwedê te'ala: *"Xwedê wan kesên ku îman anîne, hem di dunyayê de hem di axîretê de li ser wê gotina sabit (ku kelîma şehadetê ye) dihêle."*[1] *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٢٩- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّ الكَافِرَ إِذَا عَمِلَ حَسَنَةً أُطْعِمَ بِهَا طُعْمَةً مِنَ الدُّنْيَا، وَأَمَّا المُؤْمِنُ فَإِنَّ اللَّهَ يَدَّخِرُ لَهُ حَسَنَاتِهِ فِي الآخِرَةِ، وَيعقِبُهُ رِزْقاً فِي الدُّنْيَا عَلَى طَاعَتِهِ).

وفِي رِوَايةٍ: (إِنَّ اللَّهَ لَا يَظْلِمُ مُؤْمِناً حَسَنَةً، يُعْطَى بِهَا فِي الدُّنْيَا، وَيُجْزَى بِهَا فِي الآخِرَة، وَأَمَّا الْكَافِرُ فَيُطْعَمُ بِحَسَنَاتِ مَا عَمِلَ لِلهِ تَعَالَى فِي الدّنْيَا، حَتَّى إِذَا أَفْضَى إِلَى الآخِرَةِ لَمْ يَكُنْ لَهُ حَسَنَة يُجْزَى بِهَا). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

429- Ji Enes (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê mirovek bê îman karekî baş bike Xwedê bi wê qenciyê rizqekî dunyayê didiyê. Lêbelê mirovek mu'min karekî baş bike Xwedê te'ala qenciyê dixe zexîra wî ya axîretê. Di dunyayê de jî li gora taetê wî Xwedê rizqê wî dide.

Di rîwayeteke dîtir de: "Bêguman Xweda te'ala qenciyeke mu'min bê hember nahêle. Mu'min, hem di dunyayê de hem di axîretê de mukafata wê qenciya xwe dibîne. Lêbelê kafir ew karê ku ji bo Xwedê kiriye di dunyayê de mukafata wê dibîne, lê wextê ku tê axîretê qenciyeke ku mukafata wê bibîne namîne." *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٣٠- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (مَثَلُ الصَّلَوَاتِ الخَمسِ كَمَثَلِ نَهَرٍ جَارٍ غَمْرٍ عَلَى بَابِ أَحَدِكُمْ يَغْتَسِلُ مِنْهُ كُلَّ يَوْمٍ خَمْسَ مَرَّاتٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

430- Ji Cabir (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mesela pênc wext nimêjan wekî çemekî ye ku li ber derê mala yekî ji we diherike û her roj ew meriv xwe pênc caran tê de dişo." *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٣١- وَعَنِ اِبْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَا مِنْ رَجُلٍ مُسلِمٍ يَمُوتُ فَيَقُومُ عَلَى جِنَازَتِهِ أَربَعُونَ رَجُلاً لَا يُشْرِكُونَ بِاللَّهِ شَيْئاً إِلَّا شَفَّعَهُمُ الله فِيهِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1 Îbrahîm, 14/27.

431- Ji kurê ‘Ebbas (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: “Mirovekî misilman wextê bimire û çil mirovê ku şirîka ji Xwedê re çênakin li ser cenazê wî nimêj bikin, muheqqeq wê Xwedê te‘ala mehdera wan di derbarê wî miriyî de qebûl bike.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٣٢- وَعَنْ اِبْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: كُنَّا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي قُبَّةٍ نَحْواً مِنْ أَرْبَعِينَ رَجُلاً، فَقَالَ: (أَتَرضَونَ أَنْ تكُونُوا رُبُعَ أَهْلِ الجَنَّةِ؟) قُلْنَا: نَعَمْ، قَالَ: (أَتَرضَوْنَ أَنْ تَكُونُوا ثُلُثَ أَهْلِ الْجَنَّةِ؟) قُلْنَا: نَعَمْ، قَالَ: (وَالَّذِي نَفسُ مُحَمَّد بِيَدِهِ إِنِّي لَأَرْجُو أَنْ تكُونُوا نِصْفَ أَهْلِ الجَنَّةِ وَذلِكَ أَنَّ الْجَنَّةَ لَا يَدْخُلُهَا إِلَّا نَفْسٌ مُسْلِمَةٌ، وَمَا أَنْتُم فِي أَهْلِ الشِّرِكِ إِلَّا كَالشَّعَرَةِ البَيْضَاءِ فِي جِلْدِ الثَّوْرِ الأَسْوَدِ أَوْ كَالشعَرَةِ السَّوْدَاءِ فِي جِلْدِ الثَّوْرِ الأَحْمَرِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

432- Ji kurê Mes‘ûd (r.), got: Em wekî çil mirovî digel Pêxemberê Xwedê (s.) di konekî de bûn. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Hûn dixwazin ku hûn bibin çar yeka ehlê cennetê?” Me got: Belê. Ewî (s.) got: “Hûn dixwazin ku hûn bibin sêyeka ehlê cennetê?” Me got: Belê. Ewî (s.) got: “Ez sond dixwim bi wî yê ku nefsa min bi destê qudreta wî ye, ez hêvîdar im ku hûn bibin nîvê ehlê cennetê. Lewra ji xeynê nefsa misilman tu kes naçe cennetê. Hûn jî di nav ehlê şirkê de ancax wekî mûyê spî di nav çermê gayê reş de, yan jî wekî mûyê reş di nav çermê gayê sor de ne.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٣٣- وَعَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِي ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (إِذَا كَانَ يَوْمُ القِيَامَةِ دَفَعَ الله إِلَى كُلِّ مُسْلِمٍ يَهُودِيّاً أَوْ نَصْرَانِيّاً فَيَقُولُ: (هذَا فِكَاكُكَ مِنَ النَّارِ).

وَفِي رِوَايَةٍ:عَنْهُ عَنْ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (يَجِيءُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ نَاسٌ مِنَ المُسْلِمِينَ بِذُنُوبٍ أَمْثَالِ الجِبَالِ يَغْفِرُهَا الله لَهُم). رَوَاهُ مُسْلِم.

433- Ji Ebû Mûsayê Eş‘erî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê dibe roja qiyametê Xwedê te‘ala her misilmanekî, Cihûyekî û yan jî Filehekî didê û dibêje eva xelasiya te ji êgir e.”

Di rîwayeteke dîtir de: Ji Ebû Mûsa, Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Roja qiyametê hinek mirovên misilman ku wekî çiyan gunehên wan hene wê

werin, Xwedê te‘ala dê wana bibexşîne.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٣٤- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: سمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (يُدْنَى الْمُؤْمِنُ يَوْمَ القِيَامَةِ مِن رَبِّهِ حَتَّى يَضَعَ كَنَفَهُ عَلَيْهِ، فَيُقرِّرُهُ بِذُنُوبه فيَقُولُ: أَتَعرفُ ذَنبَ كَذَا،أَتعرفُ ذَنبَ كَذَا؟ فَيَقُولُ: رَبِّ أَعْرِفُ، قَالَ: فَإِنِّي قَد سَتَرتُهَا عَلَيْكَ فِي الدُّنْيَا، وَأَنَا أَغْفِرُها لَكَ اليومَ، فيُعطَى صَحِيفَةَ حَسَنَاته) رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمْ.

434- Ji Îbnu ‘Umer (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: “Mumin roja qiyametê wisa nêzingê Xwedê dibe heta Xwedê te‘ala setra xwe datîne li ser gunehê wî û pê dide gotin û ji ehlê heşrê dide veşartin. Vêca Xwedê (ezze we celle) dibêje tu filan gunehê xwe dizanî, tu filan gunehê xwe dizanî? Mumin jî dibêje belê Rebbê min, ez dizanim. Xwedê te‘ala dibêje: “Min ew guneh di dunyayê de li ser te veşartibû û ezê îro jî ewî gunehî li te bibexşînim. Vêca deftera xêrê ya wî tê dayinê.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٣٥- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ أَنَّ رَجُلاً أَصَابَ مِنْ إِمْرَأَةٍ قُبْلَةً فَأَتَى النَبِيَّ ﷺ فأَخْبَرَهُ فَأَنْزَلَ اللَّهُ تَعَالَى: (وَأَقِمِ الصَّلَاةَ طَرَفِي النَّهَارِ وَزُلَفاً مِنَ اللَّيْلِ إِنَّ الحَسَنَاتِ يُذْهِبْنَ السَّيِّئَاتِ) فَقَالَ الرَّجُلُ: أَلِيَ هَذَا يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: (لجَمِيعِ أُمَّتِي كُلِّهِمْ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمْ.

435- Ji kurê Mes‘ûd (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî jinikek maç kir û hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û ew (s.) bi vê yekê agahdar kir. Li ser vê yekê Xwedê te‘ala: *“Tu her du aliyê rojê û di qismek sa‘etên şevê, nêzîkî sibê nimêj bike. Bêguman qencî gunehan dibin.”*[1] Vêca ewî mirovî got: Ya Resûlê Xwedê, ev ji bona min e? Ewî (s.) got: “Ji bona ummeta min hemûyî ye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٣٦- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فقَالَ: يَا رَسُولَ الله أَصَبْتُ حَدّاً فَأَقِمْهُ عَلَيَّ، وَحَضرَتِ الصَّلَاةُ فَصَلَّى مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَلَمَّا قَضَى الصَّلَاة قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنِّي أَصَبْتُ حدّاً فأَقِمْ فيَّ كِتَابَ الله، قَالَ: (هَلْ حَضرْتَ مَعَنَا الصَّلَاةَ؟) قَالَ:

1 Hûd, 11/114.

نَعم، قَالَ: (قَدْ غُفِرَ لَكَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

436- Ji Enes (r.), got: Mirovek hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û got: Ya Resûlê Xwedê, min tiştek kir ku heddê wacib dike. Tu wî heddî pêk bîne. Û wextê nimêjê hazir bû, ewî mirovî digel Pêxemberê Xwedê (s.) nimêj kir. Wextê nimêj xelas bû ewî got: Ya Resûlê Xwedê, min tiştek kir ku heddê wacib dike. Tu ewî heddî li gora kitêba Xwedê pêk bîne. Ewî (s.) got: "Te bi me re nimêj kir?" Ewî got: Belê. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Wî çaxî tu hatî bexşandin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٣٧- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: إِنَّ اللَّهَ لَيَرْضَى عَنْ الْعبْدِ أَنْ يَأْكُلَ الأَكْلَةَ، فَيَحْمَدَهُ عَلَيْهَا، أَوْ يَشْرَبَ الشَّرْبَةَ، فَيَحْمَدَهُ عليها. رَوَاهُ مُسْلِم.

437- Dîsa ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman Xweda, ji wî 'ebdê razî dibe ku xwarinê dixwe hemdê li ser dike û yan vexwarinê vedixwe hemdê li ser dike." *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٣٨- وَعَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ الله تَعَالَى يَبْسُطُ يَدَهُ بَاللَّيْلِ لِيَتُوبَ مُسِيءُ النَّهَارِ وَيَبْسُطُ يَدَهُ بِالنهَارِ لِيَتُوبَ مُسيءُ اللَّيْلِ حَتَّى تطْلُعَ الشَّمسُ مِنْ مَغْرِبِهَا). رَوَاهُ مُسْلِم.

438- Ji Ebû Mûsa (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.), gotiye: "Bêguman Xweda te'ala destê xwe bi şev vedike da ku gunehkarê rojê tobe bike. Û destê xwe bi rojê vedike da ku gunehkarê şevê tobe bike. Ev rewş wiha berdewam dike heta ro ji roavayê derkeve." *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٣٩- وَعَنْ أَبِي نجيح عَمْرو بْنِ عَبَسَةَ السُّلَمِيِّ ﷺ قَالَ: كنتُ وَأَنَا فِي الجَاهِلِيَّةِ أَظُنُّ أَنَّ النَّاسَ عَلَى ضَلَالَةٍ، وَأَنَّهُمْ لَيْسُوا عَلَى شَيْءٍ وَهُمْ يَعْبُدُونَ الأَوْثَانَ، فَسَمِعْتُ بِرَجُلٍ بِمَكَّةَ يُخْبِرُ أَخْبَاراً، فَقَعَدْتُ عَلَى رَاحِلَتِي فَقَدِمْتُ عَلَيْهِ، فَإِذَا رَسُولَ اللَّهِ ﷺ مُسْتَخْفِياً جُرَآءِ عَلَيْهِ قَوْمُهُ، فَتَلَطَّفْتُ حَتَّى دَخَلْتُ عَلَيْهِ بمَكَّة فَقُلْتُ لَهُ: مَا أَنْتَ؟ قَالَ: (أَنَا نَبِيٌّ) فَقلتُ: وَمَا نَبِيّ؟ قَالَ: (أَرْسَلَنِي اللَّهُ) فَقُلْتُ: وبِأَيِّ شَيْءٍ أَرْسَلَكَ؟ قَالَ: (أَرْسَلَنِي بِصَلِةِ الأَرْحَامِ وَكَسْرِ الأَوْثَانِ، وَأَنْ يُوَحَّدَ الله لَا يُشْرِكُ بِه شَيْءٌ) قُلْتُ: فَمَنْ مَعَكَ عَلَى هَذَا؟

قَالَ: (حُرٌّ وَعَبْدٌ) وَمَعَهُ يَوْمَئِذٍ أَبُو بَكْرٍ وَبِلَالٌ ﷺ فَقُلْتُ: إِنِّي مُتَّبِعُكَ، قَالَ: (إِنَّكَ لَنْ تَسْتَطِيعَ ذَلِكَ يَوْمَكَ هَذَا، أَلَا تَرَى حَالِي وَحَالَ النَّاسِ، وَلَكِنْ ارْجِعْ إِلَى أَهْلِكَ، فَإِذَا سَمِعْتَ بِي قَدْ ظَهَرتُ فَأْتِنِي) قَالَ: فَذَهَبْتُ إِلَى أَهْلِي، وَقَدِمَ رَسُولُ الله ﷺ الْمَدِينَةَ، وَكُنْتُ فِي أَهْلِي فجَعَلْتُ أَتَخَبَّرُ الأَخْبَارَ وَأَسْأَلُ النَّاسَ حِينَ قَدِمَ المدينَةَ، حَتَّى قَدِمَ نَفَرٌ مِنْ أَهْلِي الْمَدِينَةِ فَقُلْتُ: مَا فَعَلَ هَذَا الرَّجُلُ الَّذِي قَدِمَ الْمَدِينَةَ؟ فقَالُوا: النَّاسُ إِلَيْهِ سِرَاعٌ، وَقَدْ أَرَادَ قَوْمهُ قَتْلهُ فَلَمْ يَسْتَطِيعُوا ذَلِكَ، فَقَدِمْتُ المَدِينَةَ فَدَخلتُ عَلَيْهِ، فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ الله أَتَعْرِفُنِي؟ قَالَ: (نَعم، أَنْتَ الَّذِي لَقَيْتَنِي بِمَكَةَ) قَالَ: فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ الله أَخْبِرْنِي عَمَّا عَلَّمَكَ الله وَأَجْهَلُهُ، أَخْبِرْنِي عَنِ الصَّلَاةِ، قَالَ: (صَلِّ صَلَاةَ الصُّبْحِ ثُمَّ اقْصُرْ عَنِ الصَّلَاةِ حَتَّى تَرْتَفعَ الشَّمْسُ قِيدَ رُمْح، فَإِنَّهَا تَطلُعُ بَينَ قَرْنَي شَيْطَانٍ، وَحِينَئِذٍ يَسْجُدُ لَهَا الكُفَّارُ، ثُمَّ صَلِّ فَإِنَّ الصَّلَاةَ مَشْهُودَةٌ مَحْضُورَةٌ حَتَّى يَسْتَقِلَّ الظِّلُ بِالْرُمْحِ ثُمَّ اقْصُرْ عَنِ الصَّلَاةِ فَإِنَّهُ حِينَئِذٍ تُسْجَرُ جَهَنَّمُ، فَإِذَا أَقْبَلَ الْفَيءُ فَصَلِّ فَإِنَّ الصَّلَاةَ مَشْهُودَةٌ مَحْضُورَةٌ حَتَّى تُصَلِّيَ الْعَصْرَ، ثُمَّ اقْصُرْ عَنِ الصَّلَاةِ حَتَّى تَغْرُبَ الشَّمْسُ فَإِنَّهَا تَغْرُبُ بَيْنَ قَرنَيْ شَيْطَانٍ، وَحِينَئذٍ يَسْجدُ لَهَا الكُفَّارُ) قَالَ: فَقُلْتُ: يَا نَبِيَّ اللَّهِ فَالْوضُوءُ، حَدِّثْنِي عَنْه؟ فَقَالَ: (مَا مِنكُمْ رَجُل يُقَرِّبُ وَضُوءهُ فَيَتَمَضْمَضُ وَيَسْتَنْشِقُ فَيَنْتَثِرُ إِلَّا خَرَّتْ خَطَايَا وَجْهِهِ وَفِيهِ وَخَيَاشِيمِهِ، ثُمَّ إِذَا غَسَلَ وَجْهَهُ كَمَا أَمَرَهُ اللَّهُ إِلَّا خرَّتْ خَطَايَا وَجْهِهِ مِنْ أَطْرَافِ لِحْيَتِهِ مَع الْمَاءِ، ثُمَّ يغسِلُ يَدَيْهِ إِلَى الْمِرْفَقَينِ إِلَّا خَرَّتْ خَطَايَا يَدَيْهِ مِنْ أَنَامِلِهِ مَع الْمَاءِ، ثُمَّ يَمْسَحُ رَأْسَهُ، إِلَّا خَرَّتْ خَطَايَا رَأْسِهِ مِن أَطْرَافِ شَعَرِهِ مَع الْمَاءِ، ثُمَّ يَغْسِلُ قَدَمَيْهِ إِلَى الكَعْبَيْنِ، إِلَّا خَرَّتْ خَطَايَا رِجْلَيْهِ مِن أَنَامِلِهِ مَع الْمَاءِ، فَإِنْ هُوَ قامَ فَصَلَّى فَحَمِدَ اللَّهَ وَأَثْنَى عَلَيْهِ ومَجَّدَهُ بِالَّذِي هُوَ لَهُ أَهلٌ، وفَرَّغَ قَلْبَهُ لِلهِ تَعَالَى إِلَّا انْصَرَفَ مِن خَطيئَتِهِ كَهَيْئَتِهِ يَوْمَ وَلَدَتْهُ أُمُّهُ) فَحَدَّثَ عَمْرُو بْنِ عَبَسَةَ بِهَذَا الْحدِيثِ أَبَا أُمَامَة صَاحِبَ

  

رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ لَهُ أَبُو أُمَامَةَ: يَا عَمْرُو بنَ عَبَسَةَ انْظُر مَا تَقُولُ فِي مَقَام وَاحِدٍ يُعْطى هَذَا الرَّجُلُ؟ فَقَالَ عَمْرٌو: يَا أَبَا أُمَامَةَ لَقَدْ كبِرَتْ سِنِّي، وَرَقَّ عَظْمِي، واقْتَرَبَ أَجَلِي، وَمَا بِيْ حَاجَةٌ أَنْ أَكْذِبَ عَلَى اللَّهِ تَعَالَى، وَلَا عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ لَوْ لَمْ أَسْمَعْهُ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ إِلَّا مَرَّةً أَوْ مَرَّتَيْنِ أَوْ ثَلَاثاً حَتَّى عَدَّ سَبْعَ مَرَّاتٍ مَا حَدَّثْتُ أَبَداً بِهِ، وَلَكِنِّي سَمِعْتُهُ أَكْثَرَ مِنْ ذَلِكَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

439- Ji Ebû Necîh 'Emrê kurê 'Ebeseyê Sulemî (r.), got: Min di dewra cahiliyetê de qey digot temamê însanan di delaletê de ne û ew ne li ser tu tiştekî baş in û ew îbadetê pûtan dikin. Vêca min bihîst ku di Mekkê de mirovek hinek axaftinên girîng dibêje. Ez li hêstira xwe siwari bûm û hatim cem wî mirovî. Min dît ku Pêxemberê Xwedê (s.) xwe veşartiye û qewmê wî jî mûselletê li ser serê wî bûne. Ez lê geriyam heta min ew (s.) di Mekkê de dît û min jê re got: Tu kî yî? Ewî (s.) got: “Ez Pêxember im.” Min got: Pêxember çi kes e? Ewî (s.) got: “Xwedê ez şandime.” Min got: Xwedê tu bi çi şandî? Ewî (s.) got: “Xwedê bi sileya rehmê û bi şikadina pûtan ez şandime, hem tewhîda Xwedê were kirin û tu şirîk ji bo wî neyê çêkirin.” Min got: Li ser vî karî kî bi te re ye? Ewî (s.) got: “Hurrek û koleyek.” Di wê demê Ebû Bekirê Siddîq û Bilalê Hebeşî (r.) digel wî (s.) bûn. Min got: Ezê jî bibim tabi'ê te. Ewî (s.) got: “Tu vê rojê de nikarî bibî tabi'ê min, qey tu rewşa min û însanan nabînî? Lêbelê tu bizivire nav ehl û 'iyalê xwe, wextê te bihîst ku ez derketim tu wî çaxî were cem min.” Ebû Necîh got: Li ser vê yekê ez zivirîme bal ehlê xwe û Pêxemberê Xwedê (s.) jî teşrîfa Medînê kir. Welhal ez di nav ehlê xwe de bûm û dixebitîm ku xeberan hildim. Wextê Resûlê Xwedê teşrîf kire Medînê min ji însanan pirsiyar dikir. Heta çend mirov ji ehlê Medînê hatin, min got: Ev mirovê ku hatiye Medînê çi kir? Ewan gotin: Gel bi lez têne cem wî. Qewmê wî qesda kuştina wî kirin, lêbelê nikaribûn tiştekî bikin. Vêca ez hatim Medînê û hatim cem Pêxemberê Xwedê (s.) û min got: Ya Resûlê Xwedê! Tu min nas dikî? Ewî (s.) got: “Belê ewê ku di Mekkê de hatî cem min, tu ewî.” Min got: Ya Resûle Xwedê, tiştê ku Xwedê bi te daye zanîn û ez nizanim tu bi min bide zanîn. Tu nimêjê ji min re bêje. Ewî (s.) got: Tu nimêja sibê bike, paşê tu navber bide nimêjê heta roj derbikeve û qasî rimekî bilind bibe. Lewra roj wextê derdikeve di navbêna her du stiriyên şeytan de derdikeve. Di wê demê de kafir jê re secdê dikin. Paşê tu dikarî nimêj bikî, lewra nimêjê

de milyaket dibin şahid û hazir dibin, heta siha rimê ji rimê kêmtir bibe. Paşê tu navber bide nimêjê, lewra wê demê cehennem disincire. Wextê sih hat tu dikarî nimêj bikî, lewra bêguman melekê Xwedê hazir û şahid dibin heta te nimêja berêvarê kir. Paşê tu navber bide nimêjê, heta roj çû ava, lewra dîsa roj di navbêna her du stiriyên şeytan de diçe ava. Di wê demê de jî kafir ji bona wî secdê dikin." Ebû Necîh dibêje min got: Ya Resûlê Xwedê, tu min agahdar bike bi girtina destnimêjê. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Kî ji we ava destnimêja xwe amade bike, vêca avê li devê xwe werde û avê bikşîne pozê xwe û paqij bike gunehên rûyê wî û yê dev û pozê wî têne xwarê. Piştre wextê rûyê xwe bişo çawa ku Xwedê 'ezze we celle emir kiriye, gunehên rûyê wî ji aliyê riha wî ve bi avê re têne xwarê. Piştre wextê destê xwe heta enîşkan bişo, gunehên ku bi destê wî hatine kirinê ji neynûkan ve bi avê re têne xwarê. Piştre wextê serê xwe mesih kir gunehên serê wî ji binê porê wî ve bi avê re têne xwarê. Piştre wextê lingê xwe heta gûzeka bişo gunehê ku wî bi lingê xwe kiriye ji serê tiliyên wî ve bi avê re têne xwarê. Vêca eger ew mirov rabe û nimêj bike, hemd û bi tiştên ku babetê şanê Xwedê te'ala ne pesnê wî bide û dilê xwe ji Xwedê re vala bike; muheqqeq ew mirov ji gunehan vala dibe wekî wê roja ku dayika wî ew aniye dunyayê."

'Emrê kurê 'Ebese ev hedîsa hanê ji Ebû Umame –Sehabiyê Pêxemberê Xwedê (s.) ye– re got: Vêca Ebû Umame got: Ya 'Emrê kurê 'Ebese! Tu bifikire ku tu çi dibêjî. Di yek cihî de hevqas xêr tê dayin ji bona vî mirovî? 'Emr got: Ya Ebû Umame! Bêguman ez kal bûme û hestiyên min zirav bûne û ecelê min jî nêzîk bûye. Êdî çi hacet heye ku ez derewan li Xwedê te'ala û li Pêxemberê Xwedê (s.) bikim. Heger min carekê û du caran û sê caran heta heft caran ev hedîs ji wî (s.) nebihîstibûya min tu wextî ji tu kesî re nedigot. Dibe ku min ji vê hejmarê jî zêdetir bihîstibe. *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٤٠- وَعَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِذَا أَرَادَ اللهُ تَعَالَى رَحْمَةَ أُمَّةٍ قَبَضَ نَبِيَّهَا قَبْلَهَا فَجَعَلَهُ لَهَا فَرَطاً وَسَلَفاً بَيْنَ يَدَيْهَا، وَإِذَا أَرَادَ هَلَكَةَ أُمَّةٍ عَذَّبَهَا وَنَبِيُّهَا حَيٌّ فَأَهْلَكَهَا وَهُوَ حَيٌّ يَنْظُرُ، فَأَقَرَّ عَيْنَهُ بِهَلَاكِهَا حِينَ كَذَّبُوهُ وَعَصَوا أَمْرَهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

440- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê ku Xwedê te'ala rehmê li ummetekê bike, beriya wê ummetê qebza ruhê Pêxemberê wê ummetê dike û wî Pêxemberî ji wê ummetê re dike serok û

rêber. Wextê ku Xwedê (‘ezze we celle) bixwaze ku ummetekê bibe helakê hê Pêxemberê wê li heyatê ye wê ummetê dide ‘ezabê û dibe helakê. Welhal ew Pêxember jî bi çavê xwe dibîne. Ev yeka ji bo ku ew Pêxember kêfxweş bibe bi helaka wê ummetê. Lewra ewan bawerî pê neanîn û bêemriya wî kirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ الرَّجَاءِ

## FEZÎLETA HÊVÎDARIYÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَأُفَوِّضُ أَمْرِي إِلَى اللَّهِ إِنَّ الله بَصِيرٌ بِالْعِبَادِ فَوَقَاهُ ۞ اللَّهُ سَيِّئَاتِ مَا مَكَرُوا﴾

"Ez karê xwe dispêrime Xwedê. Bêguman Xweda bi ‘ebdê xwe agahdar e û wana ji fê‘lê fêlbazan diparêze."[1]

٤٤١- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: (قَالَ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ: أَنَا عِنْدَ ظَنِّ عَبْدِي بِي، وَأَنَا مَعَهُ حَيْثُ يَذْكُرُنِي، وَالله للهُ أَفْرَحُ بِتَوْبَةِ عَبْدِهِ مِنْ أَحَدِكُمْ يَجِدُ ضَالَّتَهُ بِالْفَلَاةِ، وَمَنْ تَقَرَّبَ إِلَيَّ شِبْراً تَقَرَّبْتُ إِلَيْهِ ذِرَاعاً، وَمَنْ تَقَرَّبَ إِلَيَّ ذِرَاعاً تَقَرَّبْتُ إِلَيْهِ بَاعاً، وَإِذَا أَقْبَلَ إِلَيَّ يَمْشِي أَقبلتُ إِلَيْهِ أُهَرْوِلُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

441- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedê ‘ezze we celle gotiye: Ez li cem zenna ‘ebdê xwe me.[2] ‘Ebdê min li kuderê min bi bîrbîne ez bi wî re me. Ez bi Xwedê sond dixwim ku Xwedê te‘ala bi toba yekî, ji we zehftir kêfxweş dibe, ji kêfxweşiya wî kesê ku tiştê xwe ya windabûyî di çolekê de dibîne. Kî bihustekê bi bal min ve were ezê bi zira‘ekî bal wî ve herim û kî bi zira‘ekî bi bal min ve were ezê bi qulacekê bal wî ve herim û wextê ew bi meş ber bi min were ezê jî bi bez bal wî ve herim." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٤٣- وَعَنِ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ النَّبِيَّ ﷺ قَبْلَ مَوْتِهِ بِثَلَاثَةِ أَيَّامٍ يَقُولُ: (لَا

---

1 Xafir, 40/44-45.

2 Yanî ‘ebdê min bi çi awayî derbarê min de zen bike ezê li gora wê zennê bi wî re muamele bikim. Qenciyê zen bike yê qenciyê bibîne û eger nebaşiyê zen bike dê nebaşiyê bibîne.

يَمُوتَنَّ أَحَدُكُم إِلَّا وَهُوَ يُحسِنُ الظَّنَّ بِاللَّهِ عزَّ وجلَّ). رَوَاهُ مُسْلِم.

442- Ji Cabirê kurê 'Ebdullah (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Pêxemberê Xwedê (s.) sê roj beriya wefata wî bihîst (s.), wiha digot: "Heta yek ji we derbarê Xwedê 'ezze we celle de zenna qenc neke bila nemire." *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٤٣-وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (قَالَ اللَّهُ تَعَالَى: يَا ابْنَ آدَمَ إِنَّكَ مَا دَعَوْتَنِي وَرَجَوْتَنِي غَفَرْتُ لَكَ عَلَى مَا كَانَ مِنْكَ وَلَا أُبَالِي، يَا ابْنَ آدَمَ، لَوْ بَلَغَتْ ذُنُوبُكَ عَنَانَ السَّمَاءِ، ثُمَّ اسْتَغْفَرْتَنِي غَفَرتُ لَكَ وَلَا أُبَالِي، يَا ابْنَ آدَمَ، إِنَّكَ لَوْ أَتَيْتَنِي بِقُرَابِ الأَرْضِ خَطَايَا، ثُمَّ لَقَيْتَنِي لَا تُشْرِكُ بِي شَيْئاً، لَأَتَيْتُكَ بِقُرَابِهَا مَغْفِرَةً). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

443- Ji Enes (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Xwedayê te'ala gotiye: "Hey Benî Adem! Bêguman hingî tu gazî min bikî û hêviyê ji min bikî, gunehê te çiqas bibe jî ezê te bibexşînim û ez lê nanêrim. Hey Benî Adem! Gunehê te gihîştibe ewrê asîmanan jî û paşê tu ji min daxwaza bexişandinê bikî ezê te bibexşînim û ez lê nanêrim. Hey Benî Adem! Heger tu bi tijîbûna erdê bi guneha werî bal min û tu rastî min werî di halê ku te tu tiştek ji bo min nekiribe şirîk ezê jî bi tijîbûna erdê bi mexfiretê werime bal te." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

## بَابُ الْجَمْعِ بَيْنَ الْخَوْفِ وَالرَّجَاءِ
## CEM'A NAVBÊNA TIRS Û HÊVÎDARIYÊ

اعْلَمْ أَنَّ الْمُخْتارَ لِلْعَبْدِ فِي حَالِ صِحَّتِهِ أَنْ يكون خَائِفاً رَاجِياً، وَيَكُونَ خَوْفُهُ وَرَجَاؤُهُ سَوَاءً، وَفِي حَالِ الْمَرَضِ يَتَمَحَّضُ الرَّجَاءُ. وَقَوَاعِدُ الشَّرْعِ مِنْ نُصُوصِ الْكِتَابِ وَالسُّنَّة وَغَيْرِ ذَلِكَ مُتَظَاهِرَة.

Tu bizane ku ji 'ebd re tiştê baş ev e ku ew di halê rehetiyê de ji 'ezabê Xwedê' ezze we celle bi tirs be û hêvîdarê rehma wî be, bi wekhevî. Di halê nexweşiyê de dive ku hêvîdarî serdest be. Distûrên şer'ê ji nessê Qur'anê û Hedîsê û yên ji xeynê wana li ser vê yekê hevdu zexm dikin.

قَالَ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ

Xwedê 'ezze we celle gotiye:

﴿فَلَا يَأْمَنُ مَكْرَ اللَّهِ إِلَّا الْقَوْمُ الْخَاسِرُونَ﴾

"Ji xeynê qewmê kafir tu kes ji 'ezabê Xwedê emin nabe."[1]

﴿إِنَّهُ لَا يَيْأَسُ مِنْ رَوْحِ الله إِلَّا الْقَوْمُ الْكَافِرُونَ﴾

"Bêguman ji xeynê qewmê kafir tu kes ji rehma Xwedê bêhêvî nabe."[2]

﴿يَوْمَ تَبْيَضُّ وجُوهٌ وَتَسْوَدُّ وُجُوهٌ﴾

"Roja ku hinek rû spî dibin û hinek rû jî reş dibin."[3]

﴿إِنَّ رَبَّكَ لَسَرِيعُ العِقَابِ وَإِنَّهُ لَغَفُورٌ رَحِيمٌ﴾

"Bêguman 'ezabê Rebbê te bi lez e û bêguman ew xefûr e û rehîm e."[4]

﴿إِنَّ الأَبْرَارَ لَفِي نعِيمٍ ۞ وَإِنَّ الْفُجَّارَ لَفِي جَحِيم﴾

"Bêguman mirovê qenc di cenneta xwedannîmet de ne û bêguman mirovê xerab jî di cehennemê de ne."[5]

﴿فَأَمَّا مَنْ ثَقُلَتْ مَوَازِينُه ۞ فَهُوَ فِي عِيشَةٍ رَاضِيةٍ ۞ وَأَمَّا مَنْ خَفَّتْ مَوَازِينُهُ ۞ فَأُمُّهُ هَاوِية ۞ وَمَا أَدْرَاكَ مَاهِيَهْ ۞ نَار حَامِيَهْ﴾

"Her kî şehîna wî ya xêran giran be, ew di jiyanek xweş de ye û her kî şehîna wî ya xêran sivik be cihê wî hawiye ye. Qey tu dizanî hawiye çi ye? Ew agirek bi şewat e."[6]

٤٤٤- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَوْ يَعْلَمُ المُؤْمِنُ مَا عِنْدَ اللَّهِ مِنَ العُقُوبَةِ، مَا طَمَعَ بِجَنَّتِهِ أَحَدٌ، وَلَوْ يَعْلَمُ الكافِرُ مَا عِنْدَ اللَّهِ مِنَ الرَّحْمَةِ، مَا قَنَطَ مِنْ رَحْمَتِهِ أَحَدٌ). رَوَاهُ مُسْلِم.

444- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wiha gotiye: "Heger mirovê mu'min bizaniya çi ezab li bal Xwedê heye tu kesî hêviya cennetê nedikir û eger mirovê kafir jî bizaniya li cem Xwedê

1 E'raf, 7/99.
2 Yûsuf, 12/87.
3 Alî 'Îmran, 3/106.
4 E'raf, 7/167.
5 Înfitar, 82/13-14.
6 Qarî'e, 101/6-9.

çi rehmet heye tu kes ji rehma wî bêhêvî nedibû.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٤٥- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدرِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا وُضِعَتْ الْجَنَازَةُ وَاحْتَمَلَهَا النَّاسُ أَوْ الرِّجَالُ عَلَى أَعْنَاقِهِمْ، فَإِنْ كَانَتْ صَالِحَةً قَالَتْ: قَدِّمُونِي قَدِّمُونِي، وَإِنْ كَانَتْ غَيْرَ صَالِحَةٍ، قَالَتْ: يَا وَيْلَهَا! أَيْنَ تَذْهَبُونَ بِهَا؟ يَسْمَعُ صَوْتَهَا كُلُّ شَيْءٍ إِلَّا الإِنْسَانُ، وَلَوْ سَمِعَهُ لَصَعِقَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

445- Ji Ebû Se‘îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wiha gotiye: “Wextê cenaze tê danîn û mirov an jî mêr ewî hildigirine ser milê xwe, eger ew însanekî baş be dibêje hûn min bibin, hûn min bibin. Heger însanekî nebaş be dibêje heywax, hûnê evî kû ve bibin.Ji xeynê însanan her tişt dengê wê dibihîze û eger însan ew deng bibihîstiya dê bêhiş biketa û biketa xwarê.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

٤٤٦- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: الْجَنَّةُ أَقْرَبُ إِلَى أَحَدِكُمْ مِنْ شِرَاكِ نَعْلِهِ، وَالنَّارُ مِثْلُ ذلِكَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

446- Ji kurê Mes‘ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotîye: “Cennet ji pergê sola we nêzîktirê we ye. Agir jî wisa ye.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ الْبُكَاءِ

## GIRÎNA JI TIRSA XWEDÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَيَخِرُّونَ لِلأَذْقَانِ يَبْكُونَ وَيَزِيدُهُمْ خُشُوعاً﴾

“Di halê girînê de li ser çena xwe dikeve erdê û ji xwendina Qur’ana pîroz tirsa wan zêde dibe.”[1]

﴿أَفَمِنْ هَذَا الحَدِيثِ تَعْجَبُونَ ۝ وتَضْحَكُونَ وَلَا تَبْكُونَ﴾

“Hûn ji vê axaftinê –ji Qur’anê– heyirî dîmînin û hûn dikenin le nagirîn.”[2]

1 Îsra, 17/109.

2 Necm, 53/59-60.

٤٤٧- وَعَنْ اِبْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ لِي النَّبِيُّ ﷺ: (اقْرَأ عَلَيَّ الْقُرْآنَ) قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللهِ، أَقْرَأُ عَلَيْكَ، وَعَلَيْكَ أُنْزِلَ؟ قَالَ: (إِنِّي أُحِبُّ أَنْ أَسْمَعَهُ مِنْ غَيْرِي) فَقَرَأْتُ عَلَيْهِ سُورَةَ النِّسَاءِ، حَتَّى جِئْتُ إِلَى هَذِهِ الآيَةِ: ﴿فَكَيْفَ إِذَا جِئْنَا مِنْ كُلِّ أُمَّةٍ بِشَهِيدٍ وَجِئْنَا بِكَ عَلَى هَؤُلَاءِ شَهِيداً﴾ قَالَ: (حَسْبُكَ الآنَ) فَالْتَفَتُّ إِلَيْهِ، فَإِذَا عَيْنَاهُ تَذْرِفَانِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

447- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Tu Qur'anê ji min re bixwîne." Min got: Ya Pêxemberê Xwedê, ezê çawa ji te re Qur'ane bixwînim, ya rastî Qur'an jî li ser te nazil bûye? Ewî (s.) got: "Ez hez dikim Qur'anê ji hinekê din guhdarî bikim. Vêca min jî jê re sûretê Nîsa xwend heta vê ayetê: *"Wextê em ji her ummetekê şahidekî bînin û em te jî bikin şahid li ser wan wê çawa be?*[1] Ewî (s.) got: "A nika bes e." Vêca min berê xwe da wî û min dît ku her du çavên wî (s.) hêstiran dibarînin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٤٨- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: خَطَبَ رَسُولُ اللهِ ﷺ خُطْبَةً مَا سَمِعْتُ مِثْلَهَا قَطُّ، فقَالَ: (لَوْ تَعْلَمُونَ مَا أَعْلَمُ لَضَحِكْتُمْ قَلِيلاً وَلَبَكَيْتُمْ كَثِيراً) قَالَ: فَغَطَّى أَصْحَابُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وُجُوهَهُمْ، وَلَهُمْ خَنِينٌ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

448- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) xutbeyeke wisa xwend min wekî wê xutbê tu xutbe nebihîstibû. Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: "Heger tişta ku ez dizanim we bizanîbûya, hûnê hindikî bikeniyana û gelekî bigiriyana." Rawî got: Eshabê Resûlê Xwedê (s.) çavên xwe girtin ku hûra hûra giriyê wan bû. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٤٩- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (لَا يَلِجُ النَّارَ رَجُلٌ بَكَى مِنْ خَشْيَةِ اللَّهِ حَتَّى يَعُودَ اللَّبَنُ فِي الضَّرْعِ، وَلَا يَجْتَمِعُ غُبَارٌ فِي سَبِيلِ اللَّهِ وَدُخَانُ جَهَنَّمَ).

رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيح.

449- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mirovê ku ji tirsa Xwedê giriyaye nakeve êgir heta şîr dîsa nezivire gihan. Toza

1 Nîsa, 4/41.

di rêya Xwedê de û dûyê cehennemê nayêne cem hevdu." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e û sehîh e.*

٤٥٠ - وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (سَبْعَةٌ يُظِلُّهُمُ الله فِي ظِلِّهِ يَوْمَ لَا ظِلَّ إِلَّا ظِلُّه: إِمَامٌ عَادِلٌ، وَشَابٌ نَشَأَ فِي عِبَادَةِ اللَّهِ تَعَالَى، وَرَجُلٌ قَلْبُهُ مُعَلَّقٌ فِي الْمَسَاجِدِ، وَرَجُلانِ تَحَابَّا فِي اللَّهِ، اجْتَمَعَا عَلَيْهِ، وتَفَرَّقَا عَلَيْهِ، وَرَجُلٌ دَعَتْهُ إِمْرَأَةٌ ذَاتُ مَنْصِبٍ وَجَمَالٍ، فَقَالَ: إِنِّي أَخَافُ الله، ورَجُلٌ تَصَدَّقَ بِصَدَقَةٍ فَأَخْفَاهَا حَتَّى لَا تَعْلَمَ شِمَالُهُ مَا تُنْفِقُ يَمِينُه، ورَجُلٌ ذَكَرَ اللَّهَ خَالِياً فَفَاضَتْ عَيْنَاهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

450- Dîsa ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Heft qismê misilmanan hene, Xwedê ('ezze we celle) di wê roja (qiyamet) ku ji xeynê siha wî tu sih tunene, ewana xwedansih dike:

Ew pêşdarê dadmend. Hem ew xortê ku di îbadetê Xwedê de gihîştiye. Hem ew mirovê ku dilê wî bi mizgeftan ve girêdayî ye. Hem ew du mirovên ku ji bona Xwedê ji hevdu hez dikin û li ser wê têne cem hev û li ser wê jî ji hevdu vediqetin. Hem ew mirovê ku jinikek xwedanmeqam û rindayî wî gazî bal xwe ve dike, ew jî dibêje: Ez ji Xwedê ditirsim. Hem ew mirovê ku sedeqekê dide, lêbelê wisa bi dizî dide ku destê wî yê çepê nizane ka destê wî yê rastê çi daye. Û hem ew mirovê ku bi tenê Xwedê bi bîr tîne û çavê wî hêstiran dibarîne." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٥١ - وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ الشِّخِّيرِ ﷺ، قَالَ: أَتَيْتُ رَسُولَ الله ﷺ وَهُوَ يُصَلِّي، وَلِجَوْفِهِ أَزِيزٌ كَأَزِيزِ المِرْجَلِ مِنَ الْبُكَاءِ. حَدِيثٌ صَحِيحٌ رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي.

451- Ji 'Ebdullahê kurê Şixîr (r.), got: Ez hatim cem Resûlê Xwedê (s.) ku ewî (s.) nimêj dikir û singa wî (s.) wekî sîtila dikele ji girî dikeliya. *Ebû Dawûd û Tirmizî bi senedeke sehîh rîwayet kirine.*

٤٥٢ - وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ، لِأُبَيِّ بْنِ كَعْبٍ ﷺ: (إِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ أَمَرَنِي أَنْ أَقْرَأَ عَلَيْكَ: (لَمْ يَكُنِ الَّذِينَ كَفَرُوا) قَالَ: وَسَمَّانِي؟ قَالَ: (نَعَمْ) فَبَكَى أُبَيّ. وفِي رِوَايةٍ: (فَجَعَلَ أُبَيّ يَبْكي). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

452- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji Ubeyê kurê Ke'b (r.) re got: "Xwedê ('ezze we celle) emrê min kir ku ez ji te re "Lem yekûnîl-lezîne keferû" bixwînim." Ubey got: Xwedê ez navdam? Ewî (s.) got: "Belê." Vêca Ubey giriya.

Di rîwayeteke din de: "Dest bi girî kir." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٥٣- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ أَبُو بَكْرٍ لِعُمَرَ ﷺ بَعْدَ وَفَاةِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ: انْطَلِقْ بِنَا إِلَى أُمِّ أَيْمَنَ ﷺ نَزُورُهَا كَمَا كَانَ رَسُولُ الله ﷺ يَزُورُهَا، فَلَمَّا انْتَهَيْنَا إِلَيْهَا بَكَتْ، فَقَالَا لَهَا: مَا يُبْكِيكِ؟ أَمَا تَعْلَمِينَ أَنَّ مَا عِنْدَ اللَّهِ تَعَالَى خَيْرٌ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَتْ: إِنِّي لَا أَبْكِي أَنِّي لَا أَعْلَمُ أَنَّ مَا عِنْدَ اللَّهِ خَيْرٌ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَلَكِنِّي أَبْكِي أَنَّ الْوَحْيَ قَدِ انْقَطَعَ مِنَ السَّمَاءِ، فَهَيَّجَتْهُمَا عَلَى الْبُكَاءِ، فَجَعَلَا يَبْكِيَانِ مَعَهَا. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

453- Dîsa ji Enes (r.) got: Piştî wefata Pêxemberê Xwedê (s.), Ebû Bekir ji 'Umer (r.) re got: "Tu rabe, em herine ziyareta Ummu Eymenê (r.) çawa ku Pêxemberê Xwedê (s.) diçû ziyareta wê." Rawî dibêje, wextê em çûne cem wê, ew giriya. Vêca Ebû Bekir û 'Umer (r.) ji wê re gotin: Ji bo çi tu digrî? Ma tu nizanî tiştê ku li cem Xwedê te'ala ye ji Pêxemberê wî re xêrtir e? Ewê got: Bêguman ez ne ji ber wî qasî digirîm. Belê ez dizanim tiştê ku li cem Xwedê (c.c.) ye ji bo Resûlê Xwedê (s.) xêrtir e. Lêbelê ez digrîm bi sedem ku ji asîmanan wehî qut bû. Ummu Eymenê ew her du jî anîn heyecanê û her duyan jî bi Ummu Eymenê re dest bi girî kirin. *Muslim riwayet kiriye.*

٤٥٤-وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: لَمَّا اشْتَدَّ بِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ، وَجَعُهُ قِيلَ لَهُ فِي الصَّلَاةِ، فَقَالَ: (مُرُوا أَبَا بَكْرٍ فَلْيُصَلِّ بِالنَّاسِ) فَقَالَتْ عَائِشَةَ ﷺ: إِنَّ أَبَا بَكْرٍ رَجُلٌ رَقِيقٌ إِذَا قَرَأَ الْقُرْآنَ غَلَبَهُ الْبُكَاءُ، فَقَالَ: (مُرُوهُ فَلْيُصَلِّ).

وَفِي رِوَايَةٍ عَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: (قُلْتُ: إِنَّ أَبَا بَكْرٍ إِذَا قَامَ مَقَامَكَ لَمْ يُسْمِعِ النَّاسَ مِنَ الْبُكَاءِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

454- Ji Îbnu 'Umer (r.) got: Wextê nexweşiyê li Pêxemberê Xwedê (s.)

giran kir. Ji Pêxemberê Xwedê (s.) hate pirsîn ku kî yê nimêj bike. Ewî (s.) got: "Hûn ji Ebû Bekir re bêjin bila ew li pêşiya misilmanan nimêj bike." Hz. 'Aîşe (r.) got: Bêguman Ebû Bekir mirovekî dil nazike, wextê Qur'anê bixwîne wê girî zora wî bibe û nikare bixwîne. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Hûn ji wî re bêjin bila ew nimêjê bide kirin."

Di rîwayeteke dîtir de: Ji Hz. 'Aîşe (r.), dibêje min got: Ya Resûlê Xwedê (s.) bêguman Ebû Bekir wextê rabe cihê te de ji ber girî nikare xwendina xwe li însanan bide bihîstin. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٥٥- وَعَنْ إِبْرَاهِيمَ بْنِ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ عَوْفٍ: أَنَّ عَبْدَ الرَّحْمَنِ بنَ عَوْفٍ ﷺ، أُتِيَ بِطَعَامٍ، وَكَانَ صَائِماً، فَقَالَ: قُتِلَ مُصْعَبُ بنُ عُمَيرٍ ﷺ وَهُوَ خَيْرٌ مِنِّي، فَلَمْ يُوجَدْ لَهُ ما يُكَفَّنُ فِيهِ إِلَّا بُرْدَةٌ، إِنْ غُطِّيَ بِهَا رَأْسُهُ بَدَتْ رِجْلَاهُ، وإِنْ غُطِّيَ بِهَا رِجْلاهُ بَدَا رَأْسُهُ، ثُمَّ بُسِطَ لَنَا مِنَ الدُنْيَا مَا بُسِطَ أَوْ قَالَ: أُعْطِينَا مِنَ الدُّنْيا مَا أُعْطِينَا، وقَدْ خَشِينَا أَنْ تَكُونَ حَسَنَاتُنا عُجِّلَتْ لَنَا، ثُمَّ جَعَلَ يَبْكِي حَتَّى تَرَكَ الطَّعَامَ. رَوَاهُ البُخَارِي.

455- Ji Îbrahîmê kurê 'Ebdurrehmanê kurê Ewf hatiye rîwayetkirin, ku bêguman ji 'Ebdurrehmanê kurê 'Ewf (r.) re hinek xwarin anîn û ew jî bi rojî bû. Vêca ewî got: Mus'ebê kurê 'Umeyr (r.), ku ji min qenctir e, hate şehîd kirin û tişteki ku pê bihata kefen kirin ji xeynê kurkekî tunebû. Wextê serê wî pê dihate nixumandin her du lingên wî rût diman û wextê lingê wî pê dihatine nixumandin serê wî rût dima. Paşê ji me re dunya pir fireh bû, û yan jî got: Ji me re dunya pir hate dayin û em tirsiyan ku ji me re mukafatê xêrê me pêşda tê dayin. Vêca dest bi girî kir û xwarin hişt, nexwar. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٤٥٦- وَعَنْ أَبِي أُمَامَةَ صُدَيِّ بْنِ عَجلَانَ البَاهِلِيِّ ﷺ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَيْسَ شَيءٌ أَحَبَّ إِلَى اللَّهِ تَعَالَى مِنْ قَطْرَتَيْنِ وَأَثَرَيْنِ: قَطْرَةُ دُمُوعٍ مِنْ خَشْيَةِ اللَّهِ، وَقَطرَةُ دَمٍ تُهرَاقُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ، وَأَمَّا الأَثْرَانِ: فَأَثَرٌ فِي سَبِيلِ اللَّهِ تَعَالَى، وَأَثَرٌ فِي فَرِيضَةٍ مِنْ فَرَائِضِ اللَّهِ تَعَالَى). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

456- Ji Ebû Umame Sudayê kurê 'Eclanê Bahilî (r.) Pêxemberê Xwedê

(s.) gotiye: “Tu tiştek li bal Xwedê (‘ezze we celle) ji evan her du dilop û rêçan hezjêkertir nîne: Dilopa hêstirê ji tirsa Xwedê û dilopa xûnê ku di rêya Xwedê de hatiye rijandin. Her du rêç jî; yek rêça di rêya Xwedê de yek jî di ferzek ji feraîzê Xwedê (‘ezze we celle) de.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

وَفِي الْبَابِ أَحَادِيث كَثِيرَة مِنْهَا حَدِيث الْعِرْبَاضِ بْنِ سَارِيَةَ ﷺ قَالَ: (وَعَظَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ مَوْعِظَةً بَلِيغَةً وَجِلَتْ مِنْهَا الْقُلُوبُ، وَذَرَفَتْ مِنْهَا الْعُيُون)

Derbarê tirsa Xwedê de gelek hedîs hene. Ji ewan hedîsan yek jî hedîsa ku hatiye rîwayetkirin ji ‘Îrbadê kurê Sariye (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji me re we‘zekê wisa da ku ji bandora wê we‘zê dil tirsiyan û çavan hêstir barandin.

## بَابُ الزُّهْدِ
## ZUHD

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿إِنَّمَا مَثَلُ الحَيَاةِ الدّنْيا كَمَاءٍ أَنْزَلْنَاهُ مِنَ السّماءِ فَاخْتَلَطَ بِهِ نَبَاتُ الأَرْضِ ممَّا يَأْكُلُ النَّاسُ وَالأَنْعَامُ حَتَّى إِذَا أَخَذَتِ الأَرضُ زُخْرُفَها وَازَيَنَتْ وَظَنَّ أَهْلُهَا أَنَهُمْ قَادِرُونَ عَلَيْها أَتَاهَا أَمْرُنَا لَيْلاً أَوْ نَهَاراً فَجَعَلْنَاهَا حَصِيداً كَأَنْ لَمْ تَغْنَ بِالأَمْسِ كَذلِكَ نُفَصِّلُ الآيات لِقَوْمٍ يَتَفَكَّرُونَ﴾

“Bêguman mesela heyata dunyayê wekî wê barana ku me ji asîmanan barandiye û sedem wê çêrê erdê ku ji wê însan û heywan dixwin tev li hevdu dibin. Wextê erdê rûyê xwe (bi gul û çîçekan) xemiland û mirovê wê erdê qey gotin êdî dikarin wê dest bi xwe bixin, wê demê emrê me bi şev an jî bi roj hat û me ew anî halê dirûnê. Her wekî roja duh nedîtiye. Em ayetên xwe ji qewmê difikirin re wiha diyar dikin.”[1]

﴿وَاضْرِبْ لَهُمْ مَثَلَ الحَيَاةِ الدُّنْيَا كَمَاءٍ أَنْزَلْنَاهُ مِنَ السَّمَاءِ فَاخْتَلَطَ بِهِ نَبَاتُ الأَرْضِ فَأَصْبَحَ هَشِيماً تَذْرُوهُ الرِّيَاحُ وَكَانَ الله عَلَى كُلِّ شَيْءٍ مُقْتَدِراً ۞ اَلْمَالُ وَالبَنُونَ زِينَةُ

1 Yûnus, 10/24.

الحَيَاةِ الدُّنْيا وَالباقِيات الصَّالحَاتُ خَيْرٌ عِنْدَ رَبِّكَ ثَوَاباً وَخَيْرٌ أَمَلاً﴾

"Tu ji bo jiyana wan ya dunyayê re mînakekê bîne ku ew wekî wê barana ku me ji asîmanan barandiye û sedem wê çêrê erdê tev li hevdu dibin ku di demek kurt de hişk dibe û ba lê dide û ji hev belav dike. Xwedê li ser her tiştî girsehêz e. Mal û zarok xemla jiyana dunyayê ne, tiştên ku her bimînin û baştir li bal Rebbê te ji aliyê xêr û ji aliyê hêvîdariyê çêtir e."[1]

﴿اعْلَمُوا أَنَّمَا الْحَيَاةُ الدُّنْيَا لَعِبٌ وَلَهوٌ وَزِينَة وَتَفَاخُرٌ بَيْنَكُمْ وَتَكَاثُرٌ فِي الأَمْوَالِ وَالأَوْلَادِ كَمَثَلِ غَيثٍ أَعْجَبَ الكُفَّارَ نَبَاتُهُ ثُمَّ يَهِيجُ فَتَرَاهُ مُصْفَرّاً ثُمَّ يَكُون حُطَاماً وَفِي الآخِرَةِ عَذَابٌ شَدِيدٌ وَمَغْفِرَةٌ مِنَ اللَّهِ وَرِضْوَانٌ وَمَا الْحَيَاةُ الدُّنْيَا إِلَّا مَتَاعُ الغُرُورِ﴾

"Hûn bizanin ku bêguman jiyana dunyayê leyistik e kêf e, nexişandin e û sedemê qurretiya we ya hûn li ser hevdu dikin û sedemê pozbilindaya we ya hûn li ser hevdu bi zehftiya mal û zarokan dikin. Mînaka vê wekî wê barana ku hêşînayiya wê li xweşa cotkaran diçe û paşê hişk dibe ku tu dibînî ew zer bûye û paşê jî dibe wekî kayê. Di axîretê de jî 'ezabekî şedîd heye û li bal Xwedê bexşandin û qayilbûn heye. Jiyana dunyayê ancax pertalek e."[2]

﴿زُيِّنَ لِلنَّاسِ حُبُّ الشَّهَوَاتِ مِنَ النِّسَاءِ وَالبَنِينَ وَالقَناطِيرِ المُقَنطَرَةِ مِنَ الذَّهَبِ وَالفِضَّةِ وَالْخَيْلِ الْمُسَوَّمَةِ وَالأَنْعَامِ وَالحَرْثِ ذلِكَ مَتَاعُ الحَيَاةِ الدُّنيَا وَالله عِنْدَهُ حُسْنُ الْمَآبِ﴾

"Hezjêkirina tiştên ku dilê însanan dibijê ji jinik, zarok, qenter qenter zêr û zîv, hespê nîşankirî, tariş (pez, çêlek, deveh) û ji çandiniyê hatine nexişandin ji însan re. Ev nîmetên jiyana dunyayê ne. Rindtirînê cihê starbûnê, li bal Xwedê ye."[3]

﴿يَا أَيُّهَا النَّاسُ إِنَّ وَعْدَ اللَّهِ حَقٌّ فَلَا تغُرَّنَّكُمُ الْحَيَاةُ الدُّنْيَا وَلَا يَغُرَّنَّكُمْ بِاللَّهِ الغَرُورُ﴾

"Gelî mirovan, bêguman soza Xwedê rast e. Vêca bila jiyana dunyayê we nexapîne û bila şeytan we şeytan we bi Xwedê nexapîne."[4]

﴿أَلْهَاكُمُ التَّكَاثُرُ ۞ حَتَّى زُرْتُمُ المَقَابِرَ ۞ كَلاَّ سَوْفَ تَعْلَمُونَ ۞ ثُمَّ كَلَّا سَوْفَ تَعْلَمُونَ ۞ كَلَّا لَوْ تَعْلَمُونَ عِلْمَ الْيَقِينِ﴾

1 Kehf, 18/45-46.
2 Hedîd, 57/20.
3 Alî 'Îmran, 3/14.
4 Fatir, 35/5.

“Pesnê we li ser hevdu û gelekbûna malê dunyayê hûn ewiqandin heta ku hûn mirin. Naxêr, hûnê hê bizanin. Paşê dîsa naxêr, hûnê hê bizanin. Naxêr, eger we bi awakî vebirî bizaniya.”[1]

﴿وَمَا هَذِهِ الْحَيَاةُ الدُّنْيَا إِلَّا لَهْوٌ وَلَعِبٌ وَإِنَّ الدَّارَ الْآخِرَةَ لَهِيَ الْحَيَوَانُ لَوْ كَانُوا يَعْلَمُونَ﴾

“Ev jiyana dunyayê ancax leyistik û kêf e. Bêguman axîret jî her ew e jîna rast, eger ew bizaninbin.”[2]

٤٥٧- عَنْ عَمْرِو بْنِ عَوْفٍ الأَنْصَارِيِّ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ بَعَثَ أَبَا عُبَيْدَةَ بنَ الجرَّاحِ ﷺ إِلَى الْبَحْرَيْنِ يَأْتِي بِجِزْيَتِهَا، فَقَدِمَ بِمَالٍ مِنَ الْبَحْرَيْنِ، فَسَمِعَتِ الأَنْصَارُ بِقُدُومِ أَبِي عُبَيْدَةَ، فَوَافَوْا صَلَاةَ الفَجْرِ مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَلَمَّا صَلَّى رَسُولُ الله ﷺ انْصَرَفَ فَتَعَرَّضُوا لَهُ، فَتَبَسَّمَ رَسُولُ الله ﷺ حِينَ رَآهُمْ، ثُمَّ قَالَ: (أَظُنكُم سَمِعتُم أَنَّ أَبَا عُبَيْدَةَ قَدِمَ بشَيْءٍ مِنَ الْبَحْرَيْنِ؟ فَقَالُوا: أَجَل يَا رَسُولَ اللَّهِ، فَقَالَ: (أَبْشِرُوا وَأَمِّلُوا مَا يَسُرُّكُمْ، فَوَاللَّهِ مَا الْفَقْرَ أَخْشَى عَلَيْكُمْ، وَلَكِنِّي أَخْشَى عَلَيْكُمْ أَنْ تُبْسَطَ الدُّنْيَا عَلَيْكُم كَمَا بُسِطَتْ عَلَى مَنْ كَانَ قَبْلَكُمْ، فَتَنَافَسُوهَا كَمَا تَنَافَسُوهَا، فَتُهْلِكَكُمْ كَمَا أَهْلَكَتْهُمْ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

457- Ji ‘Emrê kurê ‘Ewfê Ensarî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.), Ebû ‘Ubeydeyê kurê Cerrah şande Behreynê da ku malê cizyê bîne. Vêca ew bi miqdarek mal ve ji Behreynê vegeriya. Ensaran vegera Ebû ‘Ubeyde bihîstin û kombûn, nimêja sibehê digel Pêxemberê Xwedê (s.) kirin. Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) nimêj kir û zivirî Ensaran xwe jê re diyar kirin. Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) ewan wiha dît, beşişî û got: “Ez dibêm qey we bihîstiye ku Ebû ‘Ubeyde bi hinek mal ji Behreynê vegeriyaye.” Ewan gotin: Belê, Ya Resûlê Xwedê. Ewî (s.) got: “Hûn kêfxweş û hêvîdar bibin ku ji niha û pê ve tiştê ku we kêfxweş bikin hebin. Ez sond dixwim bi Xwedê ku ji niha û pê ve ji bo we ez ji xizaniyê natirsim. Lêbelê ez ditirsim ku dunya li ser we fireh bibe, çawa ku li ser ewan ummetên beriya we re hatibû fireh kirin. Vêca hûn li ser dunyayê dexesiya hevdu bikin çawa ku ewan jî dexesiya hevdu kiribûn û dunya we bibe helakê çawa ku ew birine helakê.” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

1 Tekasur, 102/1-5.
2 ‘Enkebût, 29/64.

٤٥٨- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: جَلَسَ رَسُولُ الله ﷺ عَلَى المِنْبَرِ، وَجَلَسْنَا حَوْلَهُ، فَقَالَ: (إِنَّ مِمَّا أَخَافُ عَلَيْكُمْ مِنْ بَعْدِي مَا يُفْتَحُ عَلَيْكُمْ مِنْ زَهْرَةِ الدُّنْيَا وَزِينَتِهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

458- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) li ser mînberê rûnişt û em jî dora wî rûniştin. Ewî (s.) got: "Bêguman tirsa min ya li ser we ew e ku piştî min nîmet û nexşê dunyayê li ser we fireh bibin (û hûn dilê xwe pê ve girêbidin)." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٥٩- وَعَنْهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّ الدُّنْيَا حُلْوَةٌ خَضِرَةٌ، وَإِنَّ اللَّهَ تَعَالَى مُسْتَخْلِفُكُمْ فِيهَا، فَيَنْظُرُ كَيْفَ تَعْمَلُونَ، فَاتَّقُوا الدُّنْيَا وَاتَّقُوا النِّسَاءِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

459- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman dunya şirîn e û dilkêş e. Bêguman Xweda te'ala hûn di dunyayê de xistine xelîfe û wê lê binêre ka hûnê çawa 'emel bikin. Vêca hûn xwe ji dunyayê û ji jinan biparêzin." *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٦٠- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (اللَّهُمَّ لَا عَيْشَ إِلَّا عَيْشَ الآخِرَةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

460- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ya Rebbî, ji xeynê jîna axîretê tu jîn tune." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٦١- وَعَنْهُ عَنْ رَسُولِ الله ﷺ قَالَ: (يَتْبَعُ المَيِّتَ ثَلَاث: (أَهْلُهُ، وَمَالُهُ، وَعَمَلُهُ، فَيَرْجِعُ اثْنَانِ، وَيَبْقَى مَعَهُ وَاحِدٌ: يَرْجِعُ أَهْلُهُ وَمَالُهُ، وَيَبْقَى عَمَلُهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

461- Dîsa ji wî (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Li pey mirî sê tişt diçin: Ehlê wî, malê wî û kar û 'emelê wî. Du tişt vedigerin, yek bi wî re dimîne: Ehl û malê wî vedigerin, kar û 'emelê wî bi wî re dimîne." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٦٢- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: يُؤْتَى بِأَنْعَم أَهْلِ الدُّنْيَا مِنْ أَهْلِ النَّارِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، فَيُصْبَغُ فِي النَّارِ صَبْغَةً، ثُمَّ يُقَالُ: يَا بْنَ آدَمَ هَلْ رَأَيْتَ خَيْراً قَطّ؟ هَلْ مَرَّ بِكَ نَعِيمٌ قَطُّ؟ فَيَقُولُ: لَا وَالله يَا رَبِّ، وَيُؤْتَى بِأَشَدِّ النَّاسِ بُؤْساً فِي الدُّنْيَا مِنْ أَهْلِ الجَنَّةِ فَيُصْبَغُ صَبْغَةً

فِي الجَنَّةِ، فَيُقَالُ لَهُ: يَا بْنَ آدَمَ هَلْ رَأَيْتَ بُؤْساً قَطُّ؟ هَلْ مَرَّ بِكَ شِدَّةٌ قَطُّ؟ فيَقُولُ: لا، وَاللهِ مَا مَرَّ بِي بُؤْسٌ قَطُّ، وَلا رَأَيْتُ شِدَّةً قَطُّ). رَوَاهُ مُسْلِم.

462- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Rehetirînê ehlê dunyayê yê ku cehennemî ye di roja qiyametê de tê anîn û di êgir de tê noqkirin û paşê jê re tê gotin: “Ey Benî Adem, te qet başî dîtiye? Di ber te re qet nîmetek derbas bûye?” ew dibêje: “Naxêr, wellah, ya Rebbî.” Vê carê cennetiyê ku di dunyayê de pir dijwarî dîtiye tê anîn û di cennetê de tê noqkirin û jê re tê gotin: “Ey Benî Adem, te qet dijwarî dîtiye? Li ser te re qet tengasiyek derbas bûye?” ew jî dibêje: “Naxêr, wellah, min ne dijwarî û ne jî zorî dîtiye.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٦٣- وَعَنِ الْمُسْتَوْرِد بْنِ شَدَّادٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (مَا الدُّنْيَا فِي الآخِرَةِ إِلَّا مِثْلُ مَا يَجْعَلُ أَحَدُكُمْ إِصْبُعَهُ فِي اليَمِّ، فَلْيَنْظُرْ بِمَ يَرْجِعُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

463-Ji Mustewridê kurê Şeddad (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Dunya li ber axîretê ancax wekî vê ye ku yek ji we tilîka xwe têxe di nav behrê de, ka bila ew berê xwe bidê kanî çiqas şilatî pê ve dimîne.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٦٤- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ مَرَّ بِالسُّوقِ وَالنَّاسُ كَنَفَيْهِ، فَمَرَّ بِجَدْيٍ أَسَكَّ مَيِّتٍ، فتَنَاوَلَهُ، فَأَخَذَ بِأُذُنِهِ، ثُمَّ قَالَ: (أَيُّكُمْ يُحِبُّ أَنْ يكُونَ هذَا لَهُ بِدِرهمٍ؟) فَقَالُوا: مَا نُحِبُّ أَنَّهُ لَنَا بِشَيْءٍ، وَمَا نَصنَعُ بِهِ؟ ثُمَّ قَالَ: (أَتُحِبُّونَ أَنَّهُ لَكُمْ؟) قَالُوا: والله لَوْ كانَ حَيّاً كَانَ عَيْباً أَنَّهُ أَسَكُّ. فَكَيْفَ وَهُوَ مَيِّتٌ فقَالَ: (فَوَالله لَلدُّنْيَا أَهْوَنُ عَلَى اللَّهِ مِنْ هَذَا عَلَيْكُمْ). رَوَاهُ مُسْلِم.

464- Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) rojekê derkete sûkê û mirov jî li her du kêlekên wî bûn. Ew (s.) rastî kehrekî guh piçûk û mirar hat. Pêxemberê Xwedê (s.) bi guhê kehrê girt û got: Kî ji we dixwaze ku vê kehra mirar bi dirhemekê ji xwe re bibe. Ewan gotin: Em wê bi tu tişti jî naxwazin, emê çê ji wê bikin? Ewî (s.) got: Hûn dixwazin ku ev belaş ji we re be. Ewan gotin: Wellah eger ew sax jî ba ji ber ku bêguh e ‘eybdar e, vêca çawa emê wê bivên ku ew mirar bûye? Ewî (s.) got: Wellahî

ev kehra mirar çawa li bal we bêqedr e dunya jî li cem Xwedê (‘ezze we celle) ji vê bêqedirtir e.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٦٥- وَعَنْ أَبِي ذرٍّ ﷺ قَالَ: كُنْتُ أَمْشِي مَعَ النَّبِيِّ ﷺ فِي حَرَّةٍ بِالْمَدِينَةِ، فَاسْتَقْبَلَنَا أُحُدٌ فقَالَ: (يَا أَبَا ذَرٍّ) قُلْتُ: لَبَّيْكَ يَا رَسُولَ اللَّهِ، فقَالَ: (مَا يَسُرُّنِي أَنَّ عِنْدِي مِثْلَ أُحُدٍ هَذَا ذَهَباً تَمْضِي عَلَيَّ ثَلاثَةُ أَيَّامٍ وَعِنْدِي مِنْهُ دِينَارٌ، إِلَّا شَيْءٌ أُرْصِدُهُ لِدَيْنٍ، إِلَّا أَنْ أَقُولَ بِهِ فِي عِبَادِ اللَّهِ هَكَذَا، وَهَكَذَا وَهَكَذَا) عَنْ يَمِينِهِ وَعَنْ شِمَالِهِ وَمِنْ خَلْفِهِ، ثُمَّ سَارَ فَقَالَ: (إِنَّ الأَكْثَرِينَ هُمُ الأقلُّونَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ إِلَّا مَنْ قَالَ بِالمَالِ هَكَذَا وَهَكَذَا وَهَكَذا عَنْ يَمِينِهِ، وَعَنْ شِمَالِهِ، وَمِنْ خَلْفِهِ (وَقَلِيلٌ مَا هُم) ثُمَّ قَالَ لِي: (مَكَانَكَ لَا تَبْرَحْ حَتَّى آتِيَكَ) ثُمَّ انْطَلَقَ فِي سَوَادِ اللَّيْلِ حَتَّى تَوَارَى، فَسَمِعْتُ صَوْتاً قَدِ ارْتفعَ، فَتَخَوَّفْتُ أَنْ يَكُونَ أَحَدٌ عَرَضَ لِلنَّبِيِّ ﷺ فَأَرَدْتُ أَنْ آتِيَهُ، فَذَكَرْتُ قَوْلَهُ: (لَا تَبْرَحَ حَتَّى آتِيَكَ) فَلَمْ أَبْرَحْ حَتَّى أَتَانِي، فَقُلْتُ: لَقَدْ سَمِعْتُ صَوْتاً تَخَوَّفْتُ مِنْهُ، فَذَكَرْتُ لَهُ، فَقَالَ: (وَهَلْ سَمِعْتَهُ؟) قُلْتُ: نَعَمْ، قَالَ: (ذَاكَ جِبْرِيلُ أَتَانِي فَقَالَ: مَنْ مَاتَ مِنْ أُمَّتِكَ لَا يُشرِكُ بِاللَّهِ شَيْئاً دَخَلَ الجَنَّةَ) قُلْتُ: وَإِنْ زَنَى وَإِنْ سَرَقَ؟ قَالَ: (وَإِنْ زَنَى وَإِنْ سَرَقَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

465- Ji Ebû Zerr (r.), got: Ez digel Pêxemberê Xwedê (s.) di Medînê de di “Herrê” de (erdekî têrber e) dimeşiyam, berê me kete çiyayê Uhudê. Ewî (s.) got: “Ya Ebû Zerr.” Min got: Lebê ey Resûlê Xwedê. Ewî (s.) got: “Qasî çiyayê Uhudê li bal min zêr hebin, min kêfxweş nake ku sê roj li ser min re derbas bibe û xeynê wî yê ku min ji deynan re veşartiye li cem min yek dirhem ji wî mabe. Muheqqeq ezê ewî li ‘îbadê Xwedê wisa, wisa, wisa ji aliyê wî yê rastê ve û ji aliyê wî yê çepê ve û ji pişt wî ve belav bikim.” Paşê Resûlê Xwedê (s.) meşa xwe berdewam kir û got: “Bêguman mirovê ku dunyayê de malê wan gelek, roja qiyametê de xêrên wan hindik in. Lêbelê ew kesê wisa, wisa, wisa ji aliyê xweyê rastê û ji aliyê xwe yê çepê û ji pişt xwe ve di rêya Xwedê de înfaqê dike ew jî derî vî hukmî ye. Welhal ew jî kêm in.” Paşê ji min re got: “Heta ez bizivirim, tu ji cihê xwe veneqete.” Paşê ew (s.) di tarîtî ya şevê de çû heta winda bû. Min dengekî bilind bihîst

  

û ez tirsiyam ku tiştekî xerab hate serê Pêxemberê Xwedê (s.), min dil kir ku ez wî alî ve herim. Vêca gotina wî hate bîra min: "Heta ez bizivirim, tu ji cihê xwe veneqete." Û ez di cihê xwe de mam heta ew (s.) hate cem min. Min got: Min dengek bihîst û ez ji wî dengî tirsiyam. Min ew yeka bi Resûlê Xwedê da bîr anînê. Ewî (s.) got: "Te ew deng bihîst?" Min got: Belê. Got: "Ew, Cebraîl (s.) bû. Hate cem min û got: Kî ji ummeta te bimire û tu şirîk ji Xwedê re çênekiribe ewê here cennetê. Min (Pêxember) got: Çendan wî zina û dizî jî kiribe? Wî got: Çendan ewî zina û dizî jî kiribe."
*Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٦٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَوْ كَانَ لِي مِثْلُ أُحُدٍ ذَهَباً، لَسَرَّنِي أَنْ لَا تَمُرَّ عَلَيَّ ثَلاثُ لَيَالٍ وَعِنْدِي مِنْهُ شَيْءٌ إِلَّا شَيْءٌ أُرْصِدُهُ لِدَيْنٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

466- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Heger qasî çiyayê Uhudê li bal min zêr hebin, min kêfxweş nake ku sê roj li ser min re derbas bibe û xeynê wî yê ku min ji deynan re veşartiye li cem min yek dirhem ji wî mabe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٦٧- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (انْظُرُوا إِلَى مَنْ هُوَ أَسْفَلَ مِنْكُمْ، وَلا تَنْظُرُوا إِلَى مَنْ هُوَ فَوقَكُم، فَهُوَ أَجْدَرُ أَنْ لَا تَزْدَرُوا نِعمَةَ اللَّهِ عَلَيْكُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم، وَهَذَا لَفظُ مُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةِ الْبُخَارِي: (إِذَا نَظَرَ أَحَدُكُمْ إِلَى مَنْ فُضِّلَ عَلَيْهِ فِي الْمَالِ وَالخَلْقِ، فَلْيَنْظُرْ إِلَى مَنْ هُوَ أَسْفَلُ مِنْهُ).

467- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn (ji aliyê) dunyayê ve berê xwe bidin wanên bin xwe re. Hûn berê xwe nedin yên ser xwe re. Lewra bêguman ew şirjawtir e ku hûn nîmetê Xwedayê li ser xwe kêm nebînin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine. Ev lefzê Muslim e.*

Di rîwayetek dîtir ya Buxarî de wiha ye: "Wextê yek ji we berê xwe da yekî ku di mal û di sûretî de ji wî zêdetir be, bila ew berê xwe bide yê ji bin xwe re."

٤٦٨- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (تَعِسَ عَبْدُ الدِّينَارِ وَالدِّرْهَمِ وَالقَطِيفَةِ وَالخَمِيصَةِ، إِنْ أُعْطِيَ رَضِيَ، وإِنْ لَمْ يُعْطَ لَمْ يَرْضَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

  

468- Dîsa ji wî (s.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "'Ebdê pera û qumaş û 'eba (yanî yê ku harisî dunyayê) çû helakê. Heger mal bê dayin jê re kêfxweş dibe û eger neyê dayin jê re dixeyîde." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٤٦٩- وَعَنْهُ ﷺ قَالَ: لَقَدْ رَأَيْتُ سَبْعِينَ مِنْ أَهْلِ الصُّفَّةِ، مَا مِنْهُمْ رَجُلٌ عَلَيْهِ رِدَاءٌ، إِمَّا إِزَارٌ، وَإِمَا كِسَاءٌ، قَدْ رَبَطُوا فِي أَعْنَاقِهِمْ، فَمِنْهَا مَا يَبْلُغُ نِصْفَ السَّاقَيْنِ، وَمِنْهَا مَا يَبْلُغُ الكَعْبَيْنِ، فَيَجْمَعُهُ بِيَدِهِ كَرَاهِيَةَ أَنْ تُرَى عَوْرَتُهُ. رَوَاهُ البُخَارِي.

469- Dîsa ji wî (r.), got: "Min heftê heb ji ehlê Suffeyê dîtin ku tu bêje li ser yekî tenê ji wan ridayek hebe tunebû; an pêştemal an jî 'ebayek hebû û histûyê xwe tê re derbas kiribûn. Ew pêştemal û 'eba hinek ji wan heta nîvê teşkê wan dihatin û hinek jî heta her du gûzekan dihatin û ji bo ku ewretê wî neyê dîtin bi destê xwe ew berhev dikir." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٤٧٠- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (الدُّنْيَا سِجْنُ المُؤْمِنِ وَجَنَّةُ الكَافِرِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

470- Dîsa ji wî (s.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Dunya zindana mu'min e û cenneta kafir e." *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٧١- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: أَخَذَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِمَنْكِبَيَّ، فقَالَ: (كُنْ فِي الدُّنْيَا كَأَنَّكَ غَرِيبٌ، أَوْ عَابِرُ سَبِيلٍ).

وَكَانَ ابْنُ عُمَرَ ﷺ يَقُولُ: إِذَا أَمْسَيْتَ، فَلَا تَنْتَظِرِ الصَّبَاحَ، وَإِذَا أَصْبَحْتَ، فَلَا تَنْتَظِرِ المَسَاءَ، وَخُذْ مِنْ صِحَّتِكَ لِمَرَضِكَ، وَمِنْ حَيَاتِكَ لِمَوْتِكَ). رَوَاهُ البُخَارِي.

471- Ji Îbnu 'Umer (r.) got: Pêxemberê Xwedê (s.) bi milê min girt û got: "Tu di dunyayê de wekî xerîbî be û yan jî wekî rêwiyekî be."

Îbnu 'Umer dibêje: Wextê li te bû êvar tu li hêviya sibehê nemîne û wextê li te bû sibeh tu li hêviya êvarê nemîne. Ji saxîtiya xwe parekî ji bo nexweşiya xwe bigre û ji jîna xwe jî parekî ji bo mirina xwe bihêle. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٤٧٢- وَعَنْ أَبِي الْعَبَّاسِ سَهْلِ بْنِ سَعْدِ السَّاعديِّ ﷺ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، دُلَّنِي عَلَى عَمَلٍ إِذَا عَمِلْتُهُ أَحَبَّنِي الله، وَأَحَبَّنِي النَّاسُ، فَقَالَ: (ازْهَدْ فِي

الدُّنْيَا يُحِبَّكَ الله، وَازْهَدْ فِيمَا عِنْدَ النَّاسِ يُحِبَّكَ النَّاسُ). رَوَاهُ اِبْنِ مَاجَه وَغَيْرِه.

472- Ji Ebîl-‘Ebbas Sehlê kurê Se‘dê Sa‘idî (r.), got: Mirovek hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu ji bo min kar û kiryarekî wisa bêje, wextê ez wî karî bikim hem Xwedê û hem jî însan ji min hez bikin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Tu derbarê dunyayê de zuhdê bike ku Xwedê ji te hez bike û derbarê tiştê destê însanan de jî zuhdê bike ku însan ji te hez bikin.” *Îbn Mace û xeynê wî rîwayet kirine.*

٤٧٣- وَعَنْ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ ﷺ قَالَ: ذَكَرَ عُمَرُ بْنِ الخَطَّابِ ﷺ مَا أَصَابَ النَّاسُ مِنَ الدُّنْيَا، فقَالَ: لَقَدْ رَأَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَظَلُّ الْيَوْمَ يَلْتَوِي مَا يَجِدُ مِنَ الدَّقَلِ مَا يَمْلأُ بِهِ بَطْنَهُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

473- Ji Nu‘manê kurê Beşîr (r,), got: ‘Umer Kurê Xettab (r.) behsa dewlemendiya însanan kir û got: Bi sond min dît ku Pêxemberê Xwedê (s.) temamê roja xwe bi birçîbûnê derbas kiriye û xurmeyek adî jî peyda nekir ku pê zikê xwe têr bike. *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٧٤- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: تُوُفِّيَ رَسُولُ الله ﷺ وَمَا فِي بَيْتِي مِنْ شَيءٍ يَأْكُلُهُ ذُو كَبِدٍ إِلَّا شَطْرُ شَعِيرٍ فِي رَفّ لِي، فَأَكَلْتُ مِنْهُ حَتَّى طَالَ عليَّ، فَكِلْتُهُ فَفَنِي. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

474- Ji ‘Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wextê wefat kir di mala min de tiştekî ku candara bixwara ji xeynê kulmek ceh tunebû û min ji wî cehî demek dirêj xwar. Dawiyê de ez rabûm min ew ceh pîva û li ser vê yekê ew jî xelas bû. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٧٥- وَعَنْ عَمْرُو بْنِ الْحَارِثِ أَخِي جُوَيْرِيَةَ بِنْتِ الحَارِثِ أُمِّ الْمُؤْمِنِينَ ﷺ قَالَ: مَا تَرَكَ رَسُولُ الله ﷺ عِنْدَ مَوْتِهِ دِينَاراً، وَلَا دِرْهَماً، وَلَا عَبْداً، وَلَا أَمَةً، وَلَا شَيْئاً، إِلَّا بَغْلَتَهُ الْبَيْضَاءَ الَّتِي كَان يَرْكَبُهَا، وَسِلَاحَهُ، وَأَرْضاً جَعَلَهَا لِابْنِ السَّبِيلِ صَدَقَةً. رَوَاهُ البُخَارِي.

475- Ji ‘Emrê kurê Haris birayê Cuweyriye ya keça Haris dayika mu’minan (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wextê wefat kir ne zêr û ne zîv û ne koleyek û ne cariyek û tu tiştek nehiştibû. Lêbelê hêstira xwe ya spî ya ku lê siwar dibû û sîlaha xwe hiştibû û yek jî erdekî wî ku kiribû xêr û sedeqe ji bona rêwiyan. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٤٧٦- وَعَنْ خَبَّاب بْنِ الأَرَتِّ ﷺ قَالَ: هَاجَرْنَا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ نَلْتَمِسُ وَجْهَ اللَّهِ تَعَالَى، فَوَقَعَ أَجْرُنَا عَلَى الله، فَمِنَّا مَنْ مَاتَ وَلَمْ يَأْكُلْ مِنْ أَجْرِهِ شَيْئاً، مِنْهُمْ مُصْعَبُ بْنِ عُمَيْرٍ ﷺ قُتِلَ يَوْمَ أُحُدٍ، وَتَرَكَ نَمِرَةً، فَكُنَّا إِذَا غَطَّيْنَا بِهَا رَأْسَهُ بَدَتْ رِجْلاهُ، وَإِذَا غَطَّيْنَا بِهَا رِجْلَاهُ بَدَا رَأْسُهُ، فَأَمَرَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ أَنْ نُغَطِّيَ رَأْسَهُ، وَنَجْعَلَ عَلَى رِجْلَيْهِ شَيْئاً مِنَ الإِذْخِرِ، وَمِنَّا مَنْ أَيْنَعَتْ لَهُ ثَمَرَتُهُ، فَهُوَ يَهْدِبُهَا. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

476- Ji Xebbabê kurê Eret (r.), got: Me digel Pêxemberê Xwedê (s.) ji bo riza Xwedê (‘ezze we celle) hîcret kir û sabit bû ku dê Xwedê te‘ala ji fezl û kerema xwe wê xêra me bide me. Vêca hinek ji me mirin û ji ecra xwe tiştek nexwarin. Yek ji wan Mus‘ebê kurê ‘Umeyr e (r.). Ew roja Uhudê hate kuştin û pey xwe ve kurkek hêla bû. Vêca wextê me bi wî kurkî serê Mus‘eb digirt lingên wî vekirî dima, wextê me bi wî kurkî her du lingên Mus‘eb digirt vêca serê wî derve dima. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) emrê me kir ku em serê wî bi wî kurkî veşêrin û hinek giyayê “Izxir”ê danîn li ser lingên wî. Hinek ji me jî hene fêkiyê hîcreta wan gihîştiye û ew wê diçîne û dixwe (yanî wan dunya peyda kirine û dewlemend bûne). *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٤٧٧- وَعَنْ سَهْلِ بِنْ سَعْد السَّاعِدِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَوْ كَانَتْ الدُّنْيَا تَعدِلُ عِنْدَ اللَّهِ جَنَاحَ بَعُوضَةٍ، مَا سَقَى كَافِراً مِنْهَا شَرْبَةَ مَاءٍ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

477- Ji Sehlê kurê Se‘dê Sa‘idî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Heger dunya li cem Xwedê qasî baskê pêşûyê jî bi qedir ba Xwedê te‘ala qet tu car ji wê qurtek av jî nedida kafirî.” *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

٤٧٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (أَلَا إِنَّ الدُّنْيَا مَلْعُونَةٌ، مَلْعُونٌ مَا فِيهَا، إِلَّا ذِكْرَ الله تَعَالَى، وَمَا وَالَاهُ، وَعَالِماً وَمُتَعَلِّماً). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

478- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Baldar be! Bêguman dunya mel‘ûn e û tiştê tê de jî mel‘ûn in: Bes zikrê Xwedê te‘ala, tiştê Xwedê jê hez dike/tiştê bi vê ve baldar, zanyarî û xwendekarî ne tê de.” *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

bigire, qetek nan û av." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e û sehîh e.*

٤٨٣- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ الشِّخِّيرِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ وَهُوَ يَقْرَأُ: (أَلْهَاكُمُ التَّكَاثُرُ) قَالَ: (يَقُولُ ابْنُ آدَمَ: مَالِي، مَالِي، وَهَلْ لَكَ يَا بْنَ آدَمَ مِنْ مَالِكَ إِلَّا مَا أَكَلْتَ فَأَفْنَيْتَ، أَوْ لَبِسْتَ فَأَبْلَيْتَ، أَوْ تَصَدَّقْتَ فَأَمْضَيْتَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

483- Ji 'Ebdullahê kurê Şixîr (r.), got: Ez çûme cem Pêxemberê Xwedê (s.) û ewî (s.) "Elhakumut-tekasur" dixwend. Ewî (s.) got: "Zarokê Adem dibêje: Malê min, malê min. Gelî Ademiyan, ji xeynê yê ku te xwar û xilaskir û yan yê ku te vegirt û qetand ango yê ku te sedeqe da û pêşda şand (yanî te xiste bingeh ji bo axîretê) qey malê te heye." *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٨٤- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مُغَفَّلٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَجُلٌ لِلنَّبِيِّ ﷺ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، وَاللَّهِ إِنِّي لَأُحِبُّكَ، فَقَالَ لَهُ: (انْظُرْ مَاذَا تقُولُ؟) قَالَ: وَالله إِنِّي لَأُحِبّكَ، ثَلَاثَ مَرَّاتٍ، فقَالَ: (إِنْ كُنْتَ تُحِبُّنِي فَأَعِدَّ لِلْفَقْرِ تِجْفَافاً، فَإِنَّ الفَقْرَ أَسْرَعُ إِلَى مَنْ يُحِبُّنِي مِنَ السَّيْلِ إِلَى مُنْتَهَاهُ).

رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

484- Ji 'Ebdullahê kurê Muxeffel (r.), got: Mirovekî ji Pêxemberê Xwedê (s.) re got: Ya Pêxemberê Xwedê, bi sond ez ji te hez dikim. Ewî (s.) got: "Bifikire ka tu çi dibêjî." Ewî mirovî sê caran got: Bi sond, ez ji te hez dikim. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Heger tu ji min hez bikî xwe ji feqîrî û belengaziyê re amade bike. Lewra bal yê ku ji min hez dike feqîrî ji herikandina lehiyê baskî domegaha xwe ve leztir e." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

٤٨٥- وَعَنْ كَعْبِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا ذِئْبَانِ جَائِعَانِ أُرْسِلا فِي غَنَمٍ بِأَفْسَدَ لَهَا مِنْ حِرْصِ المَرْءِ عَلَى الْمَالِ وَالشَّرَفِ لِدِينِه). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

485- Ji Ke'bê kurê Malik (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xusara du gurên birçî yên ku bêne berdan di nav kerîkî pez de ne xirabtir e ji xusara hirs û timakariya mirov ya mal û şerefa dunyayê ku, dide dînê wî." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

٤٨٦- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: نَامَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَلَى حَصِيرٍ، فَقَامَ وَقَدْ أَثَّرَ فِي جَنْبِهِ، فَقُلْنَا: يَا رَسُولَ اللَّهِ لَوِ اتَّخَذْنَا لَكَ وِطَاءً؟ فقَالَ: (مَالِي وَلِلدُّنيَا، مَا أَنَا فِي الدُّنْيَا إِلَّا كَرَاكِبٍ اسْتَظَلَّ تَحْتَ شَجَرَةٍ ثُمَّ رَاحَ وَتَرَكَهَا). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

486- Ji 'Ebdullahê kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) li ser hesîrekî/xesîlekî razabû. Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) hişyarbû û rabû dewsa wê hesîrê di kêlekê wî (s.) de çêbûbûn. Me got: Ya Pêxemberê Xwedê, qey em ji bo te doşekekê bînin çêtir nabe? Ewî (s.) got: "Qey ez û dunya em çiyê hev in? Ez di dunyayê de wekî siwarekî me ku di bin darekê de sîhdar dibe û piştre radibe û diçe." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e û sehîh e.*

٤٨٧- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (يَدْخُلُ الْفُقَرَاءُ الْجَنَّةَ قَبْلَ الأَغْنِيَاءِ بِخَمْسِمَائَةِ عَامٍ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

487- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Feqîr bi pênsed salî beriya dewlemendan diçine cennetê." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e û sehîh e.*

٤٨٨- وَعَنْ اِبْنِ عَبَّاسٍ، وَعِمْرَانَ بْنِ حُصَيْنٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (اطَّلَعْتُ فِي الجَنَّةِ فَرَأَيْتُ أَكْثَرَ أَهْلِهَا الفُقَرَاءَ، وَاطَّلَعْتُ فِي النَّارِ فَرَأَيْتُ أَكْثَرَ أَهْلِهَا النِّسَاءِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ، مِنْ رِوَايَةِ اِبْنِ عَبَّاسٍ.

488- Ji kurê 'Ebbas û ji 'Îmranê kurê Husayn (r.) Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Min li cennetê nihêrî, min dît ku gelekê ehlê wê feqîr in. Min li cehennemê nihêrî, min dît ku gelekê ehlê wê jî jin in." *Buxarî û Muslim bi hevdu re ji Îbn 'Ebbas riwayet kirine.*

٤٨٩- وَعَنْ أُسَامَةَ بْنِ زَيْدٍ ﷺ عنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (قُمْتُ عَلَى بَابِ الجَنَّةِ، فَكَانَ عَامَّةُ مَنْ دَخَلَهَا المَسَاكِينُ، وَأَصحَابُ الجَدِّ مَحْبُوسُونَ، غَيْرَ أَنَّ أَصْحَابَ النَّارِ قَدْ أُمِرَ بِهِم إِلَى النَّارِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

489- Ji Usameyê kurê Zeyd (r,), Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ez li ber

derê cennetê sekinîm, min dît ku gelekê ku dikevinê mirovê belengaz in. Mirovê maldar jî hatibûn sekinandin, lêbelê ehlê êgir emr hatibû dayin ku ew werine avêtin di agirî de." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٩٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَة ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (أَصْدَقُ كَلِمَةٍ قَالَهَا شَاعِرٌ كَلِمَةُ لَبِيدٍ: أَلَا كُلُّ شَيءٍ مَا خَلَا اللَّهُ بَاطِلُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

490- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Rasttirîna gotinan ku hozana gotiye, gotina Lebîd eva ye: "Rind bizanin ku ji xeynê Xwedê her tişt pûç e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ فَضْلِ الْجُوعِ
## BIRÇÎBÛN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿فَخَلَفَ مِنْ بَعْدِهِمْ خَلْفٌ أَضَاعُوا الصَّلَاةَ وَاتَّبَعُوا الشَّهَوَاتِ فَسَوْفَ يَلقَوْنَ غيًّا ۞ إِلَّا مَنْ تَابَ وَآمَنَ وَعَمِلَ صَالِحاً فَأُولَئِكَ يَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ وَلَا يُظْلَمُونَ شَيْئاً﴾

"Piştî wan Pêxember û salihan mirovên gelek neqenc hatin, nimêj nekirin, înkariya Xwedê kirin, bi pey şehweta xwe ketin. Vêca ewê dê bikevin newalek ya cehennemê. Bes ew kesê ji xerabiyê vegere û baweriyê bîne û hem kar û 'emelê xalis bike, ew kesana wê herine behiştê, neheqî li wan nayê kirin."[1]

﴿فَخَرَجَ عَلَى قَوْمِهِ فِي زِينَتِهِ قَالَ الَّذِينَ يُرِيدُونَ الْحَيَاةَ الدُّنْيَا يَا لَيْتَ لَنَا مِثْلَ مَا أُوتِيَ قَارُونُ إِنَّهُ لَذُو حَظٍّ عَظِيمٍ ۞ وَقَالَ الَّذِينَ أُوتُوا الْعِلْمَ وَيْلَكُمْ ثَوَابُ اللَّهِ خَيْرٌ لِمَنْ آمَنَ وَعَمِلَ صَالِحاً﴾

"Qarûn bi xeml û spehîtiya xwe ve derket bal gelê xwe. Yên ku ji heyata dunyayê hez dikirin gotin: Xwezî ji me re hebiya wekî ku hatiye dayin ji bona Qarûnî. Bêguman Qarûn xwedanê parek mezin e. Wan kesên Xwedê te'ala zanîn û zuhd dabû wan gotin: Weyl û helak ji bo we be. Sewaba Xwedê

1 Meryem, 19/59-60.

te'ala baştir e ji bona kesê bawerî aniye û 'emelê salih kiriye."[1]

﴿ثُمَّ لَتُسْأَلُنَّ يَوْمَئِذٍ عَنِ النَّعِيمِ﴾

"Paşê bêşik hûn dê roja qiyametê de bêne pirsiyar kirin ji nîmetên Xwedê te'ala daye we."[2]

﴿مَنْ كَانَ يُرِيدُ الْعَاجِلَةَ عَجَّلْنَا لَهُ فِيهَا مَا نَشَاءُ لِمَنْ نُرِيدُ ثُمَّ جَعَلْنَا لَهُ جَهَنَّمَ يَصْلَاهَا مَذْمُوماً مَدْحُوراً﴾

"Her kesê heyata dunyayê bivê, em dê dunyayê de tiştê ku me divê bidine wî kesê me jê re bivê. Paşê jî emê cehennemê bikine cihê wî, dê ew here wê de û rezîl û ji rehmeta Xwedê te'ala dûr be."[3]

٤٩١- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂، قَالَتْ: مَا شَبِعَ آلُ مُحَمَّدٍ ﷺ مِنْ خُبْزِ شَعِيرٍ يَوْمَيْنِ مُتَتَابِعَيْنِ حَتَّى قُبِضَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: مَا شَبِعَ آلُ مُحَمَّدٍ ﷺ مُنْذُ قَدِمَ الْمَدِينَةَ مِنْ طَعَامِ الْبُرِّ ثَلَاثَ لَيَالٍ تِبَاعاً حَتَّى قُبِضَ.

491- Ji 'Aîşe (r.), got: Malbata Pêxemberê Xwedê (s.) heta wefata wî (s.) li pey hevdu, du rojan têr nanê ceh nexweriye. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetek dîtir de: Hingî malbata Pêxemberê Xwedê (s.) hatine Medîneyê heta wefata wî (s.) sê rojan li pey hevdu nanê genim nexwarine."

٤٩٢- وَعَنْ عُرْوَةَ عَنْ عَائِشَةَ ﵂ أَنَّهَا كَانَتْ تَقُولُ: وَاللَّهِ يَا بْنَ أُخْتِي إِنْ كُنَّا لَنَنْظُرُ إِلَى الْهِلَالِ، ثُمَّ الْهِلَالِ، ثُمَّ الْهِلَالِ: ثَلَاثَةَ أَهِلَّةٍ فِي شَهْرَيْنِ، وَمَا أُوقِدَ فِي أَبْيَاتِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ نَارٌ قَطُّ، قُلْتُ: يَا خَالَةُ، فَمَا كَانَ يُعِيشُكُمْ؟ قَالَتْ: الأَسْوَدَانِ: التَّمْرُ وَالمَاءُ، إِلَّا أَنَّهُ قَدْ كَانَ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ جِيرَانٌ مِنَ الأَنْصَارِ، وكَانَتْ لَهُمْ مَنَايِحُ، وَكَانُوا يُرْسِلُونَ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ مِنْ أَلْبَانِهَا فَيَسْقِينَا. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

492- Ji 'Urwe, ji 'Aîşe (Xwedê ji her duyan razî be), ewê got: Ey kurê

1 Qeses, 28/79-80.
2 Tekasur, 102/8.
3 Îsra, 17/18.

xuşka min! Bi sond, me sê meha nedît ku agir di mala Pêxemberê Xwedê (s.) de hate vêxistin. (Yanî xwarin nehatibû pehtin). ‘Urwe got: Xaltîkê, nexwe we jîna xwe bi çi bi rê ve dibir? Ewê got: Em bi xurme û avê dijiyan, lêbelê ji Pêxemberê Xwedê (s.) re cînarê Ensarî hebûn û pezê wanê doşanî hebû. Ewan ji şîrê pezê xwe ji Pêxemberê Xwedê (s.) re dişandin me jî jê vedixwar. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٤٩٣- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ المَقْبُرِيِّ عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّهُ مَرَّ بِقَوْمٍ بَيْنَ أَيْدِيهِمْ شَاةٌ مَصْلِيَةٌ، فَدَعَوْهُ فَأَبَى أَنْ يَأْكُلَ، وَقَالَ: خَرَجَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ مِنَ الدُّنْيَا وَلَمْ يَشْبَعْ مِنْ خُبْزِ الشَّعِيرِ. رَوَاهُ البُخَارِي.

493- Ji Se‘îdê Meqbûrî, ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku rojekî ew (r.) li ber civatekê re derbas bû û li ber wan pezeke di êgir de sorkirî hebû, wan mirovan Ebû Hureyre gazî xwarinê kirin, lêbelê ew dûr sekinî nexwar û got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji dunyayê çû, ji nanê ceh jî têr nexwar. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٤٩٤- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: لَمْ يَأْكُلِ النَّبِيُّ ﷺ عَلَى خِوَانٍ حَتَّى مَاتَ، وَمَا أَكَلَ خُبْزاً مُرَقَّقاً حَتَّى مَاتَ. رَوَاهُ البُخَارِي.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: (وَلَا رَأَى شَاةً سَمِيطاً بِعَيْنِهِ قَطُّ)

494- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) heta wefat kir li ser sifrê xwarin nexwar û dîsa heta wefat kir jî nanê nerm nexwar. *Buxarî rîwayet kiriye.*

Di rîwayeteke wî ya dîtir de: Tu car bi çavê xwe peza qelandî nedîtibû.

٤٩٥- وَعَنِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ ﷺ قَالَ: لَقَد رَأَيْتُ نَبِيَّكُمْ ﷺ وَمايَجِدُ مِنَ الدَّقَلِ مَا يَمْلأُ بِهِ بَطْنَهُ. رَوَاهُ مُسْلِم.

495- Ji Nu‘manê kurê Beşîr (r.), got: Min Pêxemberê we dît, Ewî (s.) xurmeyek adî jî peyda nedikir ku zikê xwe pê têr bike. *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٩٦- وَعَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ ﷺ قَالَ: مَا رَأَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ النَّقِيَّ مِنْ حِينَ ابتَعَثَهُ اللَّهُ تَعَالَى حَتَّى قَبَضَهُ اللَّهُ، فَقِيلَ لَهُ: هَلْ كَانَ لَكُمْ فِي عَهْدِ رَسُولِ اللَّهِ مَنَاخِلُ؟ قَالَ: مَا رَأَى رَسُولُ اللَّهِ مُنْخُلاً مِنْ حِينَ ابْتَعَثَهُ اللَّهُ تَعَالَى حَتَّى قَبَضَهُ اللَّهُ تَعَالَى، فَقِيلَ لَهُ: كَيْفَ كُنْتُمْ تَأْكُلُونَ

الشَّعِيرَ غَيْرَ مَنْخُولٍ؟ قَالَ: كُنا نَطْحَنُهُ وَنَنفُخُهُ، فَيَطِيرُ مَا طَارَ، وَمَا بَقِيَ ثَرَّيْنَاهُ. رَوَاهُ البُخَارِي.

496- Ji Sehlê kurê Se'd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji wextê bûye Pêxember heta wefata xwe ardê bêjingkirî nedît. Li ser vê yekê hate gotin: Qey dewra Pêxemberê Xwedê (s.) de bêjingên we hebûn? Ewî got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji wextê bûye Pêxember heta wefata xwe bêjing nedîtibû. Li ser vê yekê hate gotin: We cehê nebêjingkirî çawa dixwar? Ewî got: Me ew ceh dihêra û paşê me dida bayê heçî jê difirî diçû yê ku dima me ew şil dikir û dikire hevîr. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٤٩٧- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: خَرَجَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ ذَاتَ يَوْمٍ أَوْ لَيْلَةٍ، فَإِذَا هُوَ بَأَبِي بَكْرٍ وَعُمَرَ ﷺ فَقَالَ: (مَا أَخْرَجَكُمَا مِنْ بُيُوتِكُمَا هَذِهِ السَّاعَةَ؟) قَالَا: الْجُوعُ يَا رَسُولَ اللَّهِ قَالَ: (وَأَنَا، وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ، لَأَخْرَجَنِي الَّذِي أَخْرَجَكُمَا، قُومَا) فَقامَا مَعَهُ، فَأَتَى رَجُلاً مِنَ الأَنْصَارِ، فَإِذَا هُوَ لَيْسَ فِي بَيْتِهِ، فَلَمَّا رَأَتْهُ الْمَرْأَةُ قَالَتْ: مَرْحَباً وَأَهْلاً، فقَالَ لَهَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَيْنَ فُلَانٌ؟) قَالَتْ: ذَهَبَ يَسْتَعْذِبُ لَنَا مِنَ الْمَاءِ، إِذْ جَاءَ الأَنْصَارِيُّ، فَنَظَرَ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَصَاحِبَيْهِ، ثُمَّ قَالَ: الْحَمْدُ لله، مَا أَحَدٌ الْيَوْمَ أَكْرَمَ أَضْيَافاً مِنِّي، فانْطَلَقَ فَجَاءَهُمْ بِعِذْقٍ فِيهِ بُسْرٌ وَتَمْرٌ ورُطَبٌ، فَقَالَ: كُلُوا، وَأَخَذَ الْمُدْيَةَ، فَقَالَ لَهُ رَسُولُ الله، (إِيَّاكَ وَالحَلُوبَ) فَذَبَحَ لَهُمْ، فَأَكَلُوا مِنَ الشَّاةِ، وَمِنْ ذَلِكَ الْعِذْقِ، وَشَرِبُوا، فَلَمَّا أَنْ شَبِعُوا وَرَوُوا قَالَ رَسُولُ الله لأَبِي بَكْرٍ وَعُمَر ﷺ: (وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ، لَتُسْأَلُنَّ عَنْ هَذَا النَّعِيمِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، أَخْرَجَكُمْ مِنْ بُيُوتِكُمُ الْجُوعُ، ثُمَّ لَمْ تَرْجِعُوا حَتَّى أَصَابَكُمْ هَذَا النَّعِيمُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

497- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) rojekê û yan şevekê ji mala xwe derket, rastî Ebû Bekir û 'Umer (r.) hat û got: "Di vê sa'etê de çi we ji mala we derxistiye?" Wan her duyan gotin: Birçîbûnê ya Pêxemberê Xwedê! Ewî (s.) got: "Bi sond ew tiştê ku we ji mala we derxistiye ez jî derxistime. Keremkin rabin." Ew her du rabûn, digel wî (s.) çûne mala miroverkî Ensarî. Lêbelê ew mirovê ensarî li mala xwe nebû, wextê jina wî Pêxemberê Xwedê (s.) dît, got: Keremkin, hûn bi xêr hatin. Pêxemberê Xwedê (s.) jê re got: "Kanî malxoyê te?" Ewê got: Çûye ji bo me ava şirîn

bîne. Wextê Ensarî hate mala xwe, li Pêxemberê Xwedê û her du hevalê wî nihêrî û piştre jî got: Elhemdu lîllah, îro tu kes aliyê mêvanan de ji min bextewartir nîne. Yekser rabû û çû gûşîkî dara xurmê anî ku pêve xurmê gihîştî, negihîştî û hişk hebûn. Got: Keremkin, bixwin û destê xwe avête pezekî. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) ji wî re got: "Nebî tu pezeka bi şîr bigirî." Malxoyê malê ji bo wan pezek serjêkir, ewan ji wê pezê û ji wî goştî xwarin û av vexwarin. Wextê wana têr xwar û vexwarin, Pêxemberê Xwedê (s.) ji Ebû Bekir û ji 'Umer (r.) re got: "Ez sond dixwim bi wî Xwedayê ku ruhê min bi destê wî ye, hûnê roja qiyametê ji van nîmetan bêne pirsiyar kirin. Birçîbûnê we ji mala we derxist û piştre beriya ku hûn bizivirine malê ev nîmet rastî we hat." *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٩٨ - وَعَنْ خَالِدِ بْنِ عُمَرَ الْعَدَوِيِّ قَالَ: خَطَبَنَا عُتْبَةُ بْنُ غَزْوَانَ، وَكَانَ أَمِيراً عَلَى الْبَصْرَةِ، فَحَمِدَ اللَّهَ وَأَثْنَى عَلَيْهِ، ثُمَّ قَالَ: أَمَّا بَعْدُ، فَإِنَّ الدُّنْيَا قَدْ آذَنَتْ بِصُرْمٍ، وَوَلتْ حَذَّاءَ، وَلَمْ يَبْقَ مِنْهَا إِلَّا صُبَابَةٌ كَصُبَابَةِ الإِنَاءِ يَتَصَابُّها صَاحِبُهَا، وَإِنَّكُمْ مُنْتَقِلُونَ مِنْهَا إِلَى دَارٍ لَا زَوَالَ لَهَا، فَانْتَقِلُوا بِخَيْرِ مَا بِحَضْرَتِكُمْ، فَإِنَّهُ قَدْ ذُكِرَ لَنَا أَنَّ الْحَجَرَ يُلْقَى مِنْ شَفِيرِ جَهَنَّمَ، فَيَهْوِي فِيهَا سَبْعِينَ عَاماً، لَا يُدْرِكُ لَهَا قَعْراً، وَاللَّهِ لَتُمْلأَنَّ، أَفَعَجِبْتُمْ؟ وَلَقَدْ ذُكِرَ لَنَا أَنَّ مَا بَيْنَ مِصْرَاعَيْنِ مِنْ مَصَارِيعِ الْجَنَّةِ مَسِيرَةَ أَرْبَعِينَ عَاماً، وَلَيَأْتِيَنَّ عَلَيْهِ يَوْمٌ وَهُوَ كَظِيظٌ مِنَ الزِّحَامِ، وَلَقَدْ رَأَيْتُنِي سَابِعَ سَبْعَةٍ مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ مَا لَنَا طَعَامٌ إِلَّا وَرَقُ الشَّجَرِ، حَتَّى قَرِحَتْ أَشْدَاقُنا، فَالْتَقَطْتُ بُرْدَةً فَشَقَقْتُها بَيْنِي وَبَيْنَ سَعْدِ بْنِ مَالِكٍ، فَأْتَزَرْتُ بِنِصْفِهَا، وَأتزر سَعْدٌ بِنِصْفِهَا، فَمَا أَصْبَحَ اليَوْمَ مِنَّا أَحَدٌ إِلَّا أَصْبَحَ أَمِيراً عَلَى مِصْرٍ مِنَ الأَمْصَارِ، وَإِنِّي أَعُوذُ بِاللَّهِ أَنْ أَكُونَ فِي نَفْسِي عَظِيماً، وَعِنْدَ اللَّهِ صَغِيراً. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

498- Ji Xalidê Îbnu 'Umerê 'Edewî, got: 'Utbeyê kurê Xezwan wextê emîrê Besrayê bû rojekê ji me re xutbe xwend. Piştî ku hemd û senayê Xwedê kir wiha got: Piştre, dunyayê fenabûna xwe î'lan kiriye û bi lez diçe li pey xwe mêze nake. Û ji wê ji xeynê tiştek hindik wekî pengava binê firaxê ku xweyê wê tê de beravkiriye tu tiştek nemaye. Hûnê ji vê derê bîçine cihekî wilo ku zewala wê tune, îca hûn bi kar û kiryarê qenc herin. Lewra ji me re hatiye behskirin ku kevir ji jora cehennemê tê avêtin û di

heftê salan de nagihêje binê cehennemê. Bi sond, dê cehennem tijî bibe. Qey hûn ji vê re ‘ecêbmayî dimînin? Ji me re dîsa hatiye gotin ku navbera du deriyan ji deriyê cennetê qasî çûyina çil salan e. Û rojekê wê were ku dê cennet tijî bibe û ji qelebalixiyê cih bi dest nakeve. Ez dizanim di nav wanê ku digel Pêxemberê Xwedê (s.) nû misilman bûne ez yê heftemîn im. Ji xeynê pelgê daran tu xwarina me tunebû, heta ji xwarina pelga lêvên me birîndar bûbûn. Min kurkek bi dest xist û min ew kire du ker (perçe); kerek ji bo min û kerek jî ji bona Se‘dê kurê Malik. Min nîvê wê ji xwe re kire pêşmalk, Se‘d jî nîvê wî yê din ji xwe re kire pêşmalk. Îro jî her yek ji me her duyan waliyê bajarekî ye. Ez xwe bi Xwedê te‘ala diparêzim ku ez li cem xwe mezin bi bim û li cem Xwedê jî piçûk bim. *Muslim rîwayet kiriye.*

٤٩٩- وَعَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: أَخْرَجَتْ لَنَا عَائِشَةُ ﷺ كِسَاءً وَإِزَاراً غَلِيظاً، قَالَتْ: قُبِضَ رَسُولُ الله ﷺ فِي هَذَيْنِ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

499- Ji Ebû Mûsayê Eş‘erî (r.), got: Rojekê ‘Aîşe (r.) ji me re carcîmek bi pirç û pêşmalkeke stûr derxist û got: Pêxemberê Xwedê (s.) di van de wefat kir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٠٠- وَعَنْ سَعْدِ بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ ﷺ قَالَ: إِنِّي لأَوَّلُ العَرَبِ رَمَى بِسَهْمٍ فِي سَبِيلِ اللَّهِ، وَلَقَدْ كُنَّا نَغْزُو مَعَ رَسُول الله ﷺ مَا لَنَا طَعَامٌ إِلَّا وَرَقُ الحُبْلَةِ، وَهَذَا السَّمُرُ، حَتَّى إِنْ كَانَ أَحَدُنَا لَيَضَعُ كَمَا تَضَعُ الشَّاةُ، مَالَهُ خِلْطٌ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

500- Ji Se‘dê kurê Ebî Weqqas (r.), got: Di nav ereban de yê ku di rêya Xwedê de yekemîn tîr avêtiye ez im. Me digel Pêxemberê Xwedê (s.) herb dikir, ji xeynê pelgên van her du daran: Hublê û Semur tu xwarina me tunebû, heta destava me ya mezin jî wekî ya pezan bû. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٠١- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُول الله ﷺ (اللَّهُمَّ اجْعَل رِزقَ آلِ مُحَمَّدٍ قُوتاً). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

501- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Xweda! Tu rizqê alê Muhemmed ancax têra wan bide.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٠٢- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: وَاللَّه الَّذِي لَا إِلَهَ إِلَّا هُوَ، إِنْ كُنْتُ لَأَعْتَمِدُ بِكَبِدِي عَلَى الأَرْضِ مِنَ الجُوعِ، وَإِنْ كُنْتُ لَأَشُدُّ الْحَجَرَ عَلَى بَطْنِي مِنَ الْجُوعِ، وَلَقَدْ قَعَدْتُ يَوْماً عَلَى طَرِيقِهِمُ الَّذِي يَخْرُجُونَ مِنْه، فَمَرَّ بِيَ النَّبِيُّ ﷺ فَتَبَسَّمَ حِينَ رَآنِي، وَعَرَفَ مَا فِي وَجْهِي وَمَا فِي نَفْسِي، ثُمَّ قَالَ: (أَبَا هِرّ) قُلْتُ: لَبَّيْكَ يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: (إِلْحَقْ) وَمَضَى فَاتَّبَعْتُهُ، فَدَخَلَ، فَاسْتَأْذَنَ، فَأَذِنَ لِي: فَدَخَلْتُ، فَوَجَدَ لَبَناً فِي قَدَحٍ فقَالَ: (مِنْ أَيْنَ هَذَا اللَّبَنُ؟) قَالُوا: أَهْدَاهُ لَكَ فُلانٌ أَوْ فُلَانةُ، قَالَ: (أَبَا هِرٍّ) قُلْتُ: لَبَّيْكَ يَا رَسُولِ اللَّهِ، قَالَ:(إِلْحَقْ إِلَى أَهْلِ الصُّفَّةِ فَادْعُهُمْ لِي) قَالَ: وَأَهْلُ الصُّفَّةِ أَضْيَافُ الإِسْلَامِ، لَا يَأْوُونَ عَلَى أَهْلٍ، وَلَا مَالٍ، وَلَا عَلَى أَحَد، وَكَانَ إِذَا أَتَتْهُ صَدَقَةٌ بَعَثَ بِهَا إِلَيْهِمْ، وَلَمْ يَتَنَاوَلْ مِنْهَ شَيئاً، وَإِذَا أَتَتْهُ هَدِيَّةٌ أَرْسَلَ إِلَيْهِمْ، وَأَصَابَ مِنْهَا، وَأَشْرَكَهُمْ فِيهَا، فَسَاءَنِي ذَلِكَ، فَقُلْتُ: وَمَا هَذَا اللَّبَنُ فِي أَهْلِ الصُّفَّةِ؟ كُنْتُ أَحَقَّ أَنْ أُصِيبَ مِنْ هَذَا اللَّبَنِ شَرْبَةً أَتَقَوَّى بِهَا، فَإِذَا جَاؤُوا أَمَرَنِي فَكُنْتُ أَنَا أُعْطِيهِم، وَمَا عَسَى أَنْ يَبْلُغَنِي مِنْ هَذَا اللَّبَنِ، وَلَمْ يَكُنْ مِنْ طَاعَةِ اللَّهِ وَطَاعَةِ رَسُولِهِ ﷺ بُدٌّ، فَأَتَيْتُهُمْ فَدَعَوْتُهُمْ، فَأَقْبَلُوا وَاسْتَأْذَنُوا، فَأَذِنَ لَهُمْ، وَأَخَذُوا مَجَالِسَهُمْ مِنَ الْبَيْت، قَالَ: (يَا أَبَا هِرٍّ) قُلْتُ: لَبَّيْكَ يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: (خُذْ فَأَعْطِهِمْ) قَالَ: فَأَخَذْتُ الْقَدَحَ، فَجَعَلْتُ أُعْطِيهِ الرَّجُلَ فَيَشْرَبُ حَتَّى يَرْوَى، ثُمَّ يَرُدُّ عَليَّ الْقَدَحَ، فَأُعْطِيهِ الآخَرَ فَيَشْرَبُ حَتَّى يَرْوَى، ثُمَّ يَرُدُّ عليَّ القَدَحَ، حَتَّى انْتَهَيْتُ إِلَى النّبِيِّ ﷺ وَقَدْ رَوِيَ الْقَوْمُ كُلهُمْ، فَأَخَذَ الْقَدَحَ فَوَضَعَهُ عَلَى يَدِه، فَنَظَرَ إِلَيَّ فَتَبَسَّمَ، فَقَالَ: (أَبَا هِرٍّ) قُلْتُ: لَبَّيْكَ يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: (بقَيْتُ أَنَا وَأَنْتَ) قُلْتُ صَدَقْتَ يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: (اقْعُدْ فَاشْرَبْ) فَقَعَدْتُ فَشَرِبْتُ، فَقَالَ: (اشْرَبْ) فَشَرِبْتُ، فَمَا زَالَ يَقُولُ: (اشْرَبْ) حَتَّى قُلْتُ: لَا وَالَّذي بَعَثَكَ بِالْحَقِّ مَا أَجِدُ لَهُ مَسْلَكاً، قَالَ: (فَأَرِنِي) فَأَعْطَيْتُهُ الْقَدَحَ، فَحَمِدَ اللَّهَ، وَسَمَّى وَشَرِبَ الْفَضْلَةَ. رَوَاهُ البُخَارِي.

  

502- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Sond bi wî Xwedayê ku ji xeynê wî tu îlah tune, min ji birçîna, zikê xwe bi erdê ve dizeliqand û kevir jî ser zikê xwe girêdida. Rojekê li ser rêya ku xelk tê re derbas dibe ez rûniştim. Pêxemberê Xwedê (s.) di ber min re derbas bû, wextê ez dîtim beşişî. Lewra ji rûyê min bi tiştê di dilê min de heyî pê zanî. Piştre ewî (s.) got: “Eba Hirr!” Min got: Keremke ya Pêxemberê Xwedê! Ewî (s.) got: “Pey min were.” Û çû ez jî pey çûm. Pêxemberê Xwedê (s.) kete mala xwe, min destûr xwest destûra min hate dayin û ez jî çûme hundir. Pêxemberê Xwedê (s.) îskanek şîr dît û got: “Ev şîr ji kuderê hat?” Ewan gotin: Filan mirovî û yan filan jinikê ji te re diyarî kir/hediye kir. Got: “Eba Hirr!” Min got: Keremke ya Pêxemberê Xwedê! Ewî (s.) got: “Tu here pey ehlê Suffeyê, wana gazî bal min bike.” Rawî dibêje: Ehlê Suffeyê mêvanê Îslamê ne; malbat, mal û kesekî ku xwe bispêrinê tune. Wextê sedeqeyek ji Pêxemberê Xwedê (s.) re dihat, ewî (s.) ew sedeqe dişande bal wan û destê xwe dirêj nedikirê. Wextê ku xelatek dihat, ewî (s.) ew xelata dişande bal ehlê Suffeyê û ewî (s.) jî tiştek jê hildida û di wê xelatê de bi wan re dibû hevpar. Ev şandina Pêxemberê Xwedê (s.) pey ehlê Suffeyê li min xweş nehat û min (dilê xwe de) got: Ev şîr çawa yê têra ehlê Suffeyê bike? Ya rastî ez zahftir musteheqqê vexwarina vî şîrî me ku pê quwet bigrim û wextê ew werin wê Pêxemberê Xwedê (s.) emrê min bike ku ez şîr bidim wan ji min re yê çi bimîne? Ji xeynê îta‘eta Xwedê û Pêxemberê wî tu çare tunebû, ez çûme pey wan û min gazî wan kirin. Ew hatin, destûr xwestin Pêxemberê Xwedê (s.) jî destûra wan da û wana di mal de di cihê Xwe de rûniştin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Eba Hirr!” Min got: Keremke ya Pêxemberê Xwedê. Ewî (s.) got: “Şîr bigire û bide wan.” (Ebû Hureyre) dibêje: Min jî îskan girt, destpêkir şîr da mirovekî û ewî vexwar heta têr bû. Paşê îskan da min, vêca min ew îskana da mirovekî dîtir, ewî jî vexwar heta têr bû û heta dor gihîşte Pêxemberê Xwedê, komê hemûyan têr vexwarin. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) ew îskan hilda, di destê xwe de girt, li min nihêrî beşişî û got: “Eba Hirr!” Min got: Keremke ya Pêxemberê Xwedê. Got: “Ez û tu man.” Min got: Belê, tu rast dibêjî. Ewî (s.) got: “Rûnê û vexwe.” Ez rûniştim û min vexwar. Ewî (s.) got: “Vexwe.” Min vexwar. Ewî (s.) her daîm digot: “Vexwe.” Heta min got: Naxêr, sond bi wî Xwedayê ku tu bi heq şandî ez cihê vexwarinê bi destnaxim (yanî zikê min tijî bûye). Got: “Tu wê îskanê bide min.” Min îskan dayê, ewî (s.) hemdê Xwedayê te‘ala kir û navê wî hilda û bermayî vexwar. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٠٣- وَعَنْ مُحَمَّدِ بْنِ سِيرِين عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: لَقَدْ رَأَيْتُنِي وَإِنِّي لَآخِرُّ فِيمَا بَيْنَ مِنْبَرِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ إِلَى حُجْرَةِ عَائِشَةَ ﷺ مَغْشِيًّا عَلَيَّ، فَيَجِيءُ الْجَائِي، فَيَضَعُ رِجْلَهُ عَلَى عُنُقِي، وَيَرَى أَنِّي مَجْنُونٌ وَمَا بِي مِنْ جُنُونٍ، مَا بِي إِلَّا الْجُوعُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

503- Ji Muhemmedê kurê Sîrîn, ji Ebû Hureyre (r.) got: Rojekê min xwe dît ku ez di navbera mînbera Pêxemberê Xwedê (s.) û odeya 'Aîşeyê (r.) de xweve çûme. Rêwî dihatin, piyê xwe datanîn ser stûyê min û digotin qey ku ez dîn im. Ya rastî bi min re dînatî tunebû, ji birçîna bû. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٠٤- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ، قَالَتْ: تُوفِّيَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَدِرْعُهُ مَرْهُونَةٌ عِنْدَ يَهُودِيٍ فِي ثَلَاثِينَ صَاعاً مِنْ شَعِيرٍ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

504- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wextê wefat kir zirhê wî ji ber sê kulm ceh li bal Cihûyekî gerew/rehîne bû. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٠٥- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: رَهَنَ النَّبِيُّ ﷺ دِرْعَهُ بِشَعِيرٍ، وَمَشَيْتُ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ بِخُبْزِ شَعِيرٍ، وَإِهَالَةٍ سَنِخَةٍ، وَلَقَدْ سَمِعْتُهُ يَقُولُ: (مَا أَصْبَحَ لِآلِ مُحَمَّدٍ صَاعٌ وَلَا أَمْسَى)، وَإِنَّهُمْ لَتِسْعَةُ أَبْيَاتٍ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

505- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) zirhê xwe pêş hinek ceh ve kiribû gerew. Min hinek nanê ceh digel hinek rûnê kevin ji Pêxemberê Xwedê (s.) re bir. Bi sond, min ji wî (s.) eva bihîst: "Malbata Muhemmed neh mal in, bi kulmek ceh sibeh û êvara xwe dibihurandin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٠٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: لَقَدْ رَأَيْتُ سَبْعِينَ مِنْ أَهْلِ الصُّفَّةِ، مَا مِنْهُمْ رَجُلٌ عَلَيْهِ رِدَاء، إِمَّا إِزَارٌ وَإِمَّا كِسَاءٌ، قَدْ رَبَطُوا فِي أَعْنَاقِهِم، فَمِنْهَا مَا يَبْلُغُ نِصْفَ السَّاقَيْنِ، وَمِنْهَا مَا يَبْلُغُ الْكَعْبَينِ، فَيَجْمَعُهُ بِيَدِهِ كَرَاهِيَةَ أَنْ تُرَى عَوْرَتُهُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

506- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Bi sond, min heftê heb ji ehlê Suffeyê dîtin. Li ser tu kesî ji wan kurkek tunebû; an pêştemal bû yan jî kerek (parçeyek) cil bû. Ewan ew bi stûyê xwe ve girêdidan; hinek ji wan digihîşte nîvê her

du teşkên wan û hinek jî digihîşte her du gûzekên wan. Vêca ew bi destê xwe berav dikirin daku ewretê wan kifşe nebe. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٠٧- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: كَانَ فِرَاشُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ مِنْ أُدُمٍ حَشْوُهُ مِنْ لِيفٍ. رَوَاهُ البُخَارِي.

507- Ji 'Aîşe (r.), got: Doşeka Pêxemberê Xwedê (s.) çerm bû û hundirê wê jî qalikê dara xurmê bû. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٠٨- وَعَنْ اِبْنِ عُمَرَ ﵄ قَالَ: كُنَّا جُلُوساً مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ إِذْ جَاءَ رَجُلٌ مِنَ الأَنْصَارِ، فَسَلَّمَ عَلَيْهِ، ثُمَّ أَدْبَرَ الأَنْصَارِيُّ، فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (يَا أَخَا الأَنْصَارِ، كَيْفَ أَخِي سَعْدُ بْنُ عُبَادَةَ؟) فَقَالَ: صَالِحٌ، فَقَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (مَنْ يَعُودُهُ مِنْكُمْ؟) فَقَامَ وَقُمْنَا مَعَهُ، وَنَحْنُ بِضْعَةَ عَشَرَ، مَا عَلَيْنَا نِعَالٌ، وَلَا خِفَافٌ، وَلَا قَلَانِسُ، وَلَا قُمُصٌ، نَمْشِي فِي تِلْكَ السِّبَاخِ، حَتَّى جِئْنَاهُ، فَاسْتَأْخَرَ قَوْمُهُ مِنْ حَوْلِهِ حَتَّى دَنَا رَسُولُ الله ﷺ وَأَصْحَابُهُ الَّذِينَ مَعَهُ. رَوَاهُ مُسْلِم.

508- Ji 'Ebdullahê Îbnu 'Umer (r.), got: Em digel Pêxemberê Xwedê (s.) rûniştibûn, mirovekî ensarî hat selam da Pêxemberê Xwedê (s.) û vegeriya û çû. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ya birayên Ensarî! Rewşa birayê min Se'dê kurê 'Ubade çawa ye? Ewî got: Baş e. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Kî ji we yê were serlêdana wî?" û rabû em jî pê re rabûn. Em nêzîkî deh û çend heban bûn û li yekî me ne pêlav, ne xufik, ne kum û ne jî kiras hebû. Em di wî erdê dêm de çûn heta em gihîştine bal Se'dê kurê 'Ubade. Vêca miletê wî, ji dora wî dûr ketin da ku Pêxemberê Xwedê (s.) û hevalê wî (s.) yê ku pê re çûbûn nêzîkî wî bibin. *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٠٩- وَعَنْ عِمْرَانَ بْنِ الحُصَينِ ﵄ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (خَيْرُكُمْ قَرْنِي، ثُمَّ الَّذِينَ يَلُونَهُم، ثُمَّ الَّذِينَ يَلُونَهُم) قَالَ عِمْرَانُ: فَمَا أَدْرِي قَالَ النبي ﷺ مَرَّتَيْنِ أَوْ ثَلَاثاً؟ (ثُمَّ يَكُونُ بَعْدَهُمْ قَوْمٌ يَشْهَدُونَ وَلَا يُسْتَشْهَدُونَ، وَيَخُونُونَ وَلَا يُؤْتَمَنُونَ، وَيَنْذِرُونَ وَلَا يُوفُونَ، وَيَظْهَرُ فِيهِمُ السِّمَنُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

509- Ji 'Îmranê kurê Huseyn (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Qenctirînê we; qernê min e, dûre qernê piştî vî, dûre qernê piştî wî."

'Îmran (r.) got: Ez nizanim Pêxemberê Xwedê (s.) (ev gotin) du caran got, yan jî sê caran. "Piştî vana, qewmekî wisa dê were ku şahidiyê dikin ku ji wan şahidî nehatiye xwestin, xiyanetê dikin bawerî bi wan nayê, nezrê dikin bi cî nayînin û di nav wan de qelewî dertê." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٥١٠- وَعَنْ أَبِي أُمَامَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (يَا بْنَ آدَمَ: إِنَّكَ أَنْ تَبْذُلَ الفَضْلَ خَيْرٌ لَكَ، وَأَنْ تُمْسِكَهُ شَرٌّ لَكَ، وَلَا تُلَامُ عَلَى كَفَافٍ، وَابْدَأْ بِمَنْ تَعُولُ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

510- Ji Ebû Umame (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Gelî mirovno! Bêguman eger tiştê ku ji ber hewcehiyên te zêde maye tu bimezêxî ji te re qenctir e û eger tu ewî bihêlî nedî ji te re xerab e. Da ku paşê lome li te neyê kirin û bi ewê ku nefeqa wî li ser te wacib e tu dest bi dayinê bike." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e û sehîh e.*

٥١١- وَعَنْ عُبَيْدِ اللَّهِ بْنِ مِحْصَنٍ الأَنْصَارِيِّ الْخَطْمِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ أَصْبَحَ مِنْكُمْ آمِناً فِي سِرْبِهِ، مُعَافىً فِي جَسَدِهِ، عِنْدَهُ قُوتُ يَوْمِهِ، فَكَأَنَّمَا حِيزَتْ لَهُ الدُّنْيَا بِحَذَافِيرِهَا). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

511- Ji 'Ubeydullahê kurê Mihsen yê Ensarî el-Xetamî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.), gotiye: "Kî ji we ji can û malê xwe bi ewleyî, di laşê xwe de ji nexweşiyan dirust û xwarina wî ya rojê jî li bal wî be herwekî ew mirov dunya hemû jê re hatiye dayin." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

٥١٢- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللهِ ﷺ قَالَ: (قَدْ أَفْلَحَ مَنْ أَسْلَمَ، وَكَانَ رِزْقُهُ كَفَافاً، وَقَنَّعَهُ اللَّهُ بِمَا آتَاهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

512- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.), gotiye: "Miheqeq ew kesê ku bûye misilman, gihaye xelasiyê rizqê wî ku têra wî dike heye û bi wî rizqê ku Xwedê te'ala dayî qinyatê dike." *Muslim riwayet kiriye.*

٥١٣- وَعَنْ أَبِي مُحَمَّدٍ فَضَالَةَ بْنِ عُبَيْدٍ الأَنْصَارِيِّ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: طُوبَى لِمَنْ هُدِيَ إِلَى الإِسْلَامِ، وَكَانَ عَيْشُهُ كَفَافاً، وَقَنَعَ. رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

513- Ji Ebû Muhemmed Fedaleyê kurê ‘Ebdullah yê Ensarî (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye, wiha digot: Çiqas bextewar e ew mirovê ku bûye misilman, rizqê wî têra wî dike û xwedanê qina‘et e.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e û sehîh e.*

٥١٤- وَعَنْ اِبْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ الله ﷺ يَبِيتُ اللَّيَالِي الْمُتَتَابِعَةَ طَاوِياً، وَأَهْلُهُ لَا يَجِدُونَ عَشَاءً، وَكَانَ أَكْثَرُ خُبْزِهِمْ خُبْزَ الشَّعِيرِ. رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

514- Ji ‘Ebdullahê kurê “Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) hinek şeva li peyhev birçî derbas dikir, malbata wî (s.) şîv nedidît û zehfê nanê wan nanê ceh bû. *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e û sehîh e.*

٥١٥- وَعَنْ فَضَالَةَ بْنِ عُبَيْدٍ ﷺ أَنَّ رَسُول الله ﷺ كَانَ إِذَا صَلَّى بِالنَّاسِ يَخِرّ رِجَالٌ مِنْ قَامَتِهِمْ فِي الصَّلَاةِ مِنَ الخَصَاصَةِ - وَهُمْ أَصْحَابُ الصُّفَّةِ - حَتَّى يَقُولَ الأَعْرَابُ: هؤُلَاءِ مَجَانِينُ، فَإِذَا صَلَّى رَسُولُ اللَّهِ؟ انْصَرَفَ إِلَيْهِمْ، فَقَالَ: (لَوْ تَعْلَمُونَ مَا لَكُمْ عِنْدَ اللَّهِ تَعَالَى، لَأَحْبَبْتُمْ أَنْ تَزْدَادُوا فَاقَةً وَحَاجَةً). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

515- Ji Fedaleyê kurê ‘Ubeydullah (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wextê li pêşiya însanan nimêj dikir hinek mirov ji birçîna nedikarîn li ser xwe rawestin û li ser qameta xwe diketine erdê –ku ew jî ehlê Suffeyê ne–, heta ‘Ereban digotin: Evana dîn in. Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) dest nimêjê bikira berê xwe dida wan û digot: “Heger we tiştê ji we re li cem Xwedê te‘ala (hatiye amadekirin) bizanîbûya, dê we bixwesta ku hûn zêdetir hewce bibin.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

٥١٦- وَعَنْ أَبِي كَرِيمَةَ الْمِقْدَامِ بْنِ مَعْدِ يَكَرِبَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (مَا مَلأَ آدَمِيٌّ وِعَاءً شَرّاً مِنْ بَطْنِهِ، بِحَسْبِ ابْنِ آدَمَ أُكُلَاتٌ يُقِمْنَ صُلْبَهُ، فَإِنْ كَانَ لَا مَحَالَةَ، فَثُلُثٌ لِطَعَامِهِ، وَثُلُثٌ لِشَرَابِهِ، وَثُلُثٌ لِنَفْسِهِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

516- Ji Ebû Kerîme Mîqdadê kurê Me'dîkerib (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Însan, ji zikê xwe xerabtir tu firax tijî nekiriye û besî wî ye çend parî ku pê pişta xwe rast bike. Heger miheqeq divê ku xwarina xwe zêde bike, bila sêyeka (3/1) zikê xwe ji xwarinê re, sêyeka wê ji vexwarinê re û sêyeka wê jî ji nefesa xwe re veqetîne." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e û sehîh e.*

٥١٧- وَعَنْ أَبِي أُمَامَةَ إِيَاسِ بْنِ ثَعْلَبَةَ الأَنْصَارِيِّ الحَارِثِيِّ ﷺ قَالَ: ذَكَرَ أَصْحَابُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ يَوْماً عِنْدَهُ الدُّنْيَا، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَلَا تَسْمَعُونَ؟ أَلَا تَسْمَعُونَ؟ إِنَّ الْبَذَاذَةَ مِنَ الإِيمَانِ، إِنَّ الْبَذَاذَةَ مِنَ الإِيمَانِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود.

517- Ji Ebû Umame Iyasê kurê Se'lebe yê Ensarî û Harisî (r.), got: Eshabê Pêxemberê Xwedê (s.) rojekê li cem wî (s.) behsa dunyayê kirin. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Gelo hûn dibihîzin? Gelo hûn dibihîzin? Bêguman jiyina sade ji îmanê ye, bêguman jiyina sade ji îmanê ye." *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

٥١٨- وَعَنْ أَبِي عَبْدِ اللَّهِ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: بَعَثَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَأَمَّرَ عَلَيْنَا أَبَا عُبَيْدَةَ، نَتَلَقَّى عِيراً لِقُرَيْشٍ، وَزَوَّدَنَا جِرَاباً مِنْ تَمْرٍ لَمْ يَجِدْ لَنَا غَيْرَهُ، فَكَانَ أَبُو عُبَيْدَةَ يُعْطِينَا تَمْرَةً تَمْرَةً، فَقِيلَ: كَيْفَ كُنْتُمْ تَصْنَعُونَ بِهَا؟ قَالَ: نَمَصُّهَا كَمَا يَمَصُّ الصَّبِيُّ، ثُمَّ نَشْرَبُ عَلَيْهَا المَاءِ، فَتَكْفِينَا يَوْمَنَا إِلَى اللَّيْلِ، وَكُنَّا نَضْرِبُ بِعِصِيِّنَا الخَبَطَ، ثُمَّ نَبُلُّهُ بِالمَاءِ فَنَأْكُلُهُ، قَالَ: وَانْطَلَقْنَا عَلَى سَاحِلِ الْبَحْرِ، فَرُفِعَ لَنَا عَلَى سَاحِلِ الْبَحْرِ كَهَيْئَةِ الْكَثِيبِ الضَّخْمِ، فَأَتَيْنَاهُ، فَإِذَا هِيَ دَابَّةٌ تُدْعَى الْعَنْبَرَ، فَقَالَ أَبُو عُبَيْدَةَ: مَيْتَةٌ، ثُمَّ قَالَ: لَا، بَلْ نَحْنُ رُسُلُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَفِي سَبِيلِ اللَّهِ، وَقَدِ اضْطُرِرْتُمْ فَكُلُوا، فَأَقَمْنَا عَلَيْهِ شَهْراً، وَنَحْنُ ثَلَاثُمَائَةٍ، حَتَّى سَمِنَّا، وَلَقَدْ رَأَيْتُنَا نَغْتَرِفُ مِنْ وَقْبِ عَيْنِهِ بِالْقِلَالِ الدُّهْنَ، وَنَقْطَعُ مِنْهُ الْفِدَرَ كَالثَّوْرِ أَوْ كَقَدْرِ الثَّوْرِ، وَلَقَدْ أَخَذَ مِنَّا أَبُو عُبَيْدَةَ ثَلَاثَةَ عَشَرَ رَجُلاً فَأَقْعَدَهُمْ فِي وَقْبِ عَيْنِهِ، وَأَخَذَ ضِلْعاً مِنْ أَضْلَاعِهِ فَأَقَامَهَا، ثُمَّ رَحَلَ أَعْظَمَ بَعِيرٍ مَعَنَا، فَمَرَّ مِنْ تَحْتِهَا،

وتَزَوَّدْنَا مِنْ لَحْمِهِ وَشَائِقَ، فَلَمَا قَدِمنَا المَدِينَةَ أَتَيْنَا رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَذَكَرْنَا ذَلِكَ لَهُ، فَقَالَ: (هُوَ رِزْقٌ أَخْرَجَهُ اللَّهُ لَكُمْ، فَهَلْ مَعَكُمْ مِنْ لَحْمِهِ شَيء فَتُطْعِمُونَا؟) فَأَرْسَلْنَا إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ مِنْهُ، فَأَكَلَهُ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

518- Ji Ebû 'Ebdullah Cabirê kurê 'Ebdullah (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) Ebû 'Ubeyde kire emîrê me. Em şandin pêşberiya karwanê Qureyşiyan û kîsikek tijî xurme jî bi me re danî. Ji xeynê wê jî tiştekî me tunebû. Vêca Ebû 'Ubeyde xurme lib lib dida me. Hate gotin: We çawa bi libek xurme jîna xwe diborand? Ebû 'Ebdullah (r.) got: Zarok çawa dimêjin, me jî wisa ew qesp dimêt, piştre jî me av vedixwer ewê xurmê wê rojê heta êvarê têra me dikir. Me bi kopalê xwe li dara "Xebetê" dixist û belgê wê bi avê nerm dikir û dixwar. Dibêje: Em hatine ber keviya behrê, tiştekî wekî girekî stûr ji me re diyar bû. Em çûne cem, me dît ku ew masiyê enber e. Ebû 'Ubeyde got: Eva mirar e. Paşê jî got: Naxêr, lêbelê em qasidê Pêxemberê Xwedê (s.) ne, em di rêya Xwedê de ne. Hûn mecbûr mane, bixwin. Em sêsed meriv mehekê li ser wê man, (me wisa jê xwar) heta em qelew jî bûn. Me ji kurtika çavê wî pê cêra duhn derdixist, me jê qasî mezinaya gayekî qetê goşt jêdikir. Ebû 'Ubeyde sêzdeh meriv ji me hilda û ew di korta çavê wî de da rûniştandinê. Ebû 'Ubeyde parxanekî wî masiyê rakir û çikand. Paşê mezintirê hêstirê bi me re bar kir û bin wî parxanî re derbas kir. Me hinek ji goştê wî masiyî hişk kir û hilda. Wextê em zivirîne Medineyê, em hatine cem Pêxemberê Xwedê (s.) û me ev yeka jê re got: Ewî (s.) jî got: Ew rizqeke Xwedê derxistiye pêşiya we, gelo li cem we tiştek ji goştê wê maye da ku ez jî jê tam bikim? Vêca me ji goştê wê ji Pêxemberê Xwedê (s.) re şand û ewî jî (s.) jê xwar. *Muslim riwayet kiriye.*

٥١٩- وَعَنْ أَسْمَاءَ بِنْتِ يَزِيدَ ﵂ قَالَتْ: كَانَ كُمَّ قَمِيصِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ إِلَى الرُّصْغِ. رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

519- Ji Esma keça Yezîd (r.), got: Devmila kirasê Pêxemberê Xwedê (s.) heta zenda destê wî bû. *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e û sehîh e.*

٥٢٠- وَعَنْ جَابِرٍ ﵁ قَالَ: إِنَّا كُنَّا يَوْمَ الْخَنْدَقِ نَحْفِرُ، فَعَرَضَتْ كُدْيَةٌ شَدِيدَةٌ، فَجَاؤُوا إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَقَالُوا: هَذِهِ كُدْيَةٌ عَرَضَتْ فِي الْخَنْدَقِ، فَقَالَ: (أَنَا نَازِلٌ)، ثُمَّ قَامَ، وَبَطْنُهُ

مَعْصُوبٌ بِحَجَرٍ، وَلَبِثْنَا ثَلاثَةَ أَيَّامٍ لَا نَذُوقُ ذَوَاقاً فَأَخَذَ النَّبِيُّ الْمِعْوَلَ، فَضَرَبَ، فَعَادَ كَثِيباً أَهْيَلَ، أَوْ أَهْيَمَ، فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ ائْذَنْ لِي إِلَى الْبَيْتِ، فَقُلْتُ لِإِمْرَأَتِي: رَأَيْتُ بِالنَّبِيِّ ﷺ شَيْئاً مَا فِي ذَلِكَ صَبْرٌ فَعِنْدَكِ شَيْءٌ؟ فقَالَتْ: عِنْدِي شَعِيرٌ وَعَنَاقٌ، فَذَبَحْتُ العَنَاقَ، وَطَحَنَتْ الشَّعِيرَ حَتَّى جَعَلْنَا اللحْمَ فِي البُرْمَةِ، ثُمَّ جِئْتُ النَّبِيَّ ﷺ وَالْعَجِينُ قَدِ انْكَسَرَ، وَالْبُرْمَةُ بَيْنَ الأَثَافِي قَدْ كَادَتْ تَنْضِجُ، فَقُلْتُ: طُعَيِّمٌ لِي، فَقُمْ أَنْتَ يَا رَسُولَ اللَّهِ وَرَجُلٌ أَوْ رَجُلانِ، قَالَ: (كَمْ هُوَ؟) فَذَكَرْتُ لَهُ فَقَالَ: (كَثِيرٌ طَيِّبٌ، قُلْ لَهَا: لَا تَنْزِعِ البُرْمَةَ، وَلَا الخُبْزَ مِنَ التَّنُّورِ حَتَّى آتِي) فَقَالَ: (قُومُوا) فَقَامَ الْمُهَاجِرُونَ وَالأَنْصَارُ، فَدَخَلْتُ عَلَيْهَا فَقُلْتُ: وَيْحَكِ، قَدْ جَاءَ النَّبِيُّ ﷺ وَالْمُهَاجِرُونَ وَالأَنْصَارُ وَمَنْ مَعَهُمْ، قَالَتْ: هَلْ سَأَلَكَ؟ قُلْتُ: نعم، قَالَ: (ادْخُلُوا وَلَا تَضَاغَطُوا) فَجَعَلَ يَكْسِرُ الخُبْزَ، وَيَجْعَلُ عَلَيْهِ اللَّحْمَ، وَيُخَمِّرُ الْبُرْمَةَ والتَّنُّورَ إِذَا أَخَذَ مِنهُ، وَيُقَرِّبُ إِلَى أَصْحَابِهِ ثُمَّ يَنْزِعُ، فَلَمْ يَزَلْ يَكْسِرُ وَيَغْرِفُ حَتَّى شَبِعُوا، وَبَقِيَ مِنْهُ، فَقَالَ: (كُلِي هَذَا وَأَهْدِي، فَإِنَّ النَّاسَ أَصَابَتْهُمْ مَجَاعَةٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رَوَايَةٍ: قَالَ جَابِر: لَمَّا حُفِرَ الْخَنْدَقُ رَأَيْتُ بِالنَّبِيِّ ﷺ خَمَصاً، فَانكَفَأْتُ إِلَى إِمْرَأَتِي فَقُلْتُ: هَلْ عِنْدَكِ شَيْءٌ؟ فإِنِّي رَأَيْتُ بِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ خَمَصاً شَدِيداً، فَأَخْرَجَتْ إِلَيَّ جِرَاباً فِيهِ صَاعٌ مِنْ شَعِيرٍ، وَلَنَا بُهَيْمَةٌ دَاجِنٌ فَذَبَحْتُهَا، وَطَحنَت الشَّعِير، فَفَرَغَتْ إِلَى فَرَاغِي، وَقَطَّعْتُهَا فِي بُرْمَتِهَا، ثُمَّ وَلَّيْتُ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ، فَقَالَتْ: لَا تَفْضَحْني بِرَسُولِ اللَّهِ وَمَنْ مَعَهُ، فَجِئْتُهُ فَسَارَرْتُهُ فَقُلْتُ: يَا رَسُولِ اللَّهِ، ذَبَحْنَا بُهَيْمَةً لَنَا، وَطَحَنَتْ صَاعاً مِنْ شَعِيرٍ، فتَعَالَ أَنْتَ وَنَفَرٌ مَعَكَ، فَصَاحَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: (يَا أَهْلَ الْخَنْدَق: إِنَّ جَابراً قَدْ صَنَعَ سُؤْراً فَحَيَّهَلاً بِكُم) فقَالَ النَّبِيِّ ﷺ: (لا تُنْزِلُنَّ بُرْمَتَكُم وَلَا تَخبِزُنَّ عَجِينَكُم حَتَّى أَجِيءَ) فَجِئْتُ، وَجَاءَ النَّبِيُّ ﷺ يَقْدُمُ النَّاسَ، حَتَّى جِئْتُ إِمْرَأَتِي فَقَالَتْ: بِكَ وَبِكَ،

  

فَقُلْتُ: قَدْ فَعَلْتُ الَّذِي قُلْتِ. فَأَخْرَجَتْ عَجِيناً، فَبَصَقَ فِيهِ وَبَارَكَ، ثُمَّ عَمَدَ إِلَى بُرْمَتِنَا فَبَصَقَ فِيهَا وَبَارَكَ، ثُمَّ قَالَ: (ادْعِ خَابِزَةً فَلْتَخْبِزْ مَعَكِ، وَاقْدَحِي مِنْ بُرْمَتِكُم وَلَا تُنْزِلُوهَا) وَهُمْ أَلْفٌ، فَأُقْسِمُ بِاللَّهِ لأَكَلُوا حَتَّى تَرَكُوهُ وَانْحَرَفُوا، وَإِنَّ بُرْمَتَنَا لَتَغِطُّ كَمَا هِيَ، وَإِنَّ عَجِينَنَا لَيُخْبَزُ كَمَا هُوَ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

520- Ji Cabir (r.), got: Me roja Xendekê çeper dikolan, em rastî cîhekî pir hişk hatin (qet nedihate kolan). Li ser vê yekê sehabî çûne cem Pêxemberê Xwedê (s.), jê re gotin: Ev erdekî hişk e, di xendekê de derket. Vêca wî (s.) got: “Ezê berjêrê tê de bibim.” Paşê rabû û zikê wî (s.) jî bi kevirekî hatibû girêdan. Em sê rojan li wê derê man me tiştek tamam nekiribû. Pêxemberê Xwedê (s.) tevir bidestê xwe girt wextê lê da ew ciyê hişk wekî xîzê ji hev belav bû. Piştre min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Îzna min bide, ezê heta malê herim. Min ji jina xwe re got: Min tiştekî wilo bi Pêxemberê Xwedê (s.) re dît ku êdî nayê tehemmul kirin, gelo li cem te tiştek tune? Wê got: Hinek ceh û kehrikek heye. Vêca min kehr serjêkir û jina min jî ceh hêra û peht, me goşt jî kire sîtilê. Paşê ez hatime cem Pêxemberê Xwedê (s.), welhal hevîr dipêjiya û sîtil jî li ser tifikê dikeliya. Min got: Hinek xwarina min heye, ya Pêxemberê Xwedê tu û mirovek û yan du mirov keremkin werin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Çiqas e?” Min jê re got. Vêca ewî (s.) got: “Tu ji jina xwe re bêje, heta ez werim bila ne sîtilê ji ser tifikê rake û ne jî nên ji tenûrê derxe.” Û (s.) got: “Rabin.” Vêca Muhacir û Ensar rabûn. Ez çûme cem jina xwe û min jê re got: Rebenê! Pêxemberê Xwedê (s.), Muhacir, Ensar û yê digel wan hemû hatin. Jina min got: Ewî (s.) ji te pirsî? Min got: Belê. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Bikevin hundir lêbelê hevdu pêpes nekin.” Û dest pê kir nan şikand û goşt danî ser, çiqas hildida devê sîtilê û tenûrê digirt û ew datanî nêzîkî eshabê xwe û paşê jî radikir. Pêxemberê Xwedê (s.) hema nan dişkênand û dixiste qûç (dida wan) heta wan têr xwarin. Heta ber wan jî ma. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) ji maliya Cabir re got: “Evî bixwe û (ji cînarê xwe re) hediye bike. Lewra însan birçî bûnê.” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

Di rîwayetek dîtir de: Cabir got: Wextê xendek hate kolanê, min dît ku Pêxemberê Xwedê (s.) gelekî birçî bûye. Ez çûme cem maliya xwe û min got: Gelo li cem te tiştek heye? Lewra min Pêxemberê Xwedê (s.) dît ku gelekî birçî bûbû. Ewê kîsikekî ku tê de mistek ceh hebû derxist û kedaniyeke/karikeke me hebû. Min ew serjêkir û jina min jî nanê ceh

peht. Wextê min karê xwe xelaskir ew jî ji karê xwe valabû, min goştê wê heywanê hûr kir. Piştre ez rabûm ku ez herime cem Pêxemberê Xwedê (s.) jina min got: Min li cem Pêxember û merivê ku pê re tên nede şermê. Ji bo vê yekê min bi dizîkava ji Pêxember (s.) re got: Ya Pêxemberê Xwedê (s.), me heywanok serjêkir û ewê (jina min) jî mistek nanê ceh peht, tu û çend mirov keremkin. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) gazîkir û got: "Gelî miletê Xendekê! Cabir xwarin amade kiriye, keremkin em herin." Û ji Cabir (r.) re jî got: "Heta ez werim ne sîtila xwe ji êgir rakin ne jî hevîrê xwe bipêjin." Ez hatim, Pêxemberê Xwedê (s.) jî beriya mirovan hat. Wextê ez hatime cem maliya xwe, ewê got: Çi bi te hatiye (yanî tu bi hişê xwe yî)? Min jî jê re got: Te çi gotiye min ew kiriye. Ewê hevîr ji Pêxember (s.) re derxist, ewî (s.) pifkire hêvîr û ew bi xwedanbereket kir. Piştre qesda sîtila me kir û pifkire wê de jî û ew jî bi xwedanbereket kir. Paşê got: "Gazî jineke nanpehtî bike bila alî te nan bipêje, sîtila xwe jî ji ser êgir ranekin hema jê bi heskan vala kin." Ew hezar mirov bûn. Ez sond dixwim bi Xwedê wana xwarin, vekişiyan û zivirîn çûn, hê jî sîtila me çawa ku dikeliya bi wî awayî bû, nanê me jî çawa ku dihate pehtin bi wî awayî bû. *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٢١- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ أَبُو طَلْحَةَ لِأُمِّ سُلَيْمٍ: قَدْ سَمِعْتُ صَوْتَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ ضَعِيفاً أَعْرِفُ فِيهِ الْجُوعَ، فَهَلْ عِنْدَكِ مِنْ شَيْءٍ؟ فَقَالَتْ: نَعَمْ، فَأَخْرَجَتْ أَقْرَاصاً مِنْ شَعِيرٍ، ثُمَّ أَخَذَتْ خِمَاراً لَهَا، فَلَفَّتِ الْخُبْزَ بِبَعضِهِ، ثُمَّ دَسَّتْهُ تَحْتَ ثَوْبِي وَرَدَّتْنِي بِبَعْضِهِ، ثُمَّ أَرْسَلَتْنِي إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ، فَذَهَبْتُ بِهِ، فَوَجَدْتُ رَسُولَ الله ﷺ جَالِساً فِي الْمَسْجِدِ، وَمَعَهُ النَّاسُ، فَقُمْتُ عَلَيْهِمْ، فَقَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَرْسَلَكَ أَبُو طَلْحَةَ؟) فَقُلْتُ: نَعَمْ، فَقَالَ: (الطَعَام) فَقُلْتُ: نَعَمْ، فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (قُومُوا) فَانْطَلَقُوا، وَانْطَلَقْتُ بَيْنَ أَيْدِيهِم حَتَّى جِئْتُ أَبَا طَلْحَةَ فَأَخبَرْتهُ، فَقَالَ أَبُو طَلْحَةَ: يَا أُمَّ سُلَيمٍ: قَدْ جَاءَ رَسُولُ الله ﷺ بِالنَّاسِ وَلَيْسَ عِنْدَنا مَا نُطْعِمُهُم؟ فَقَالَتْ: اللَّهُ وَرَسُولُهُ أَعْلَمُ، فَانطَلَقَ أَبُو طَلْحَةَ حَتَّى لَقِيَ رَسُولَ الله ﷺ فَأَقْبَلَ رَسُولُ الله ﷺ مَعَهُ حَتَّى دَخَلَا، فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (هَلُمِّي مَا عِنْدَكِ يَا أُمَّ سُلَيْمٍ) فَأَتَتْ بِذَلِكَ الخُبْزِ، فَأَمَرَ بِهِ رَسُولُ الله ﷺ فَفُتَّ، وَعَصَرَتْ

عَلَيْهِ أُمُّ سُلَيْمٍ عُكَّةً فَأَدَمَتْهُ، ثُمَّ قَالَ فِيهِ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ مَا شَاءَ الله أَنْ يَقُولَ، ثُمَّ قَالَ: (ائذَنْ لِعَشَرَةٍ) فَأَذِنَ لَهُمْ، فَأَكَلُوا حَتَّى شَبِعُوا، ثُمَّ خَرَجُوا، ثُمَّ قَالَ: (ائذَنِ لِعَشَرَة) فَأَذِنَ لَهُمْ، فَأَكَلُوا حَتَّى شَبِعُوا، ثُمَّ خَرَجُوا، ثُمَّ قَالَ: (ائْذَنْ لِعَشَرَةٍ) فَأَذِنَ لَهُمْ حَتَّى أَكَلَ الْقَوْمُ كُلُّهُم وَشَبِعُوا، وَالْقَوْمُ سَبْعُونَ رَجُلاً أَوْ ثَمَانُونَ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: فَمَا زَالَ يَدْخُلُ عَشَرَةٌ وَيَخْرُجُ عَشَرَةٌ، حَتَّى لَمْ يَبْقَ مِنْهُمْ أَحَدٌ إِلَّا دَخَلَ، فَأَكَلَ حَتَّى شَبِعَ، ثُمَّ هَيأَهَا فَإِذَا هِي مِثْلُهَا حِينَ، أَكَلُوا مِنْهَا.

وَفِي رِوَايَةٍ: فَأَكَلُوا عَشَرَةً عَشَرَةً، حَتَّى فَعَلَ ذَلِكَ بِثَمَانِينَ رَجُلاً، ثُمَّ أَكَلَ النَّبِيُّ ﷺ بعدَ ذَلِكَ وَأَهْلُ الْبَيْتِ، وَتَرَكُوا سُؤراً.

وَفِي رِوَايَةٍ: ثُمَّ أَفْضَلُوا مَا بَلَغُوا جِيرَانهُمْ.

وَفِي رِوَايَةٍ: (عَنْ أَنَسٍ قَالَ: جِئْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَوْماً، فَوَجَدْتُهُ جَالِساً مَعَ أَصْحَابِهِ، وَقَدْ عَصَبَ بَطْنَهُ بِعِصَابَةٍ، فَقُلْتُ لِبَعْضِ أَصْحَابِهِ: لِمَ عَصبَ رَسُولُ الله ﷺ بَطْنَهُ؟ فَقَالُوا: مِنَ الْجُوعِ، فَذَهَبْتُ إِلَى أَبِي طَلْحَةَ، وَهُوَ زَوْجِ أُمِّ سُلَيمٍ بِنْت مِلْحَانَ، فَقُلْتُ: يَا أَبَتَاه، قَدْ رَأَيْتُ رَسُولَ الله ﷺ عَصَبَ بَطْنَهُ بِعِصَابَةٍ، فَسَأَلْتُ بَعْضَ أَصْحَابِهِ، فَقَالُوا: مِنَ الْجُوعِ. فَدَخَلَ أَبُو طَلْحَةَ عَلَى أُمِّي فَقَالَ: هَلْ مِنْ شَيْءٍ؟ فَقَالَتْ: نَعمْ، عِنْدِي كِسَرٌ مِنْ خُبزٍ وَتَمَرَاتٌ، فَإِنْ جَاءنَا رَسُولُ الله ﷺ وَحدَهُ أَشْبَعنَاه، وَإِنْ جَاءَ آخَرُ مَعهُ قَلَّ عَنْهُمْ....) وَذَكَرَ تَمَامَ الْحَدِيثِ.

521- Ji Enes (r.), got: Ebû Telhe ji Ummu Suleymê re got: Min dengê Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, pir ze'îf bû, min zanî ku ew (s.) birçî ye. Gelo li cem te tiştekî xwarinê tune? Wê got: Belê. Û çend nanê ceh derxist û piştre laçika xwe girt, bi hinekê wê nan pêça. Piştre ew xiste bin kincên min û bi hinekê wê jî ez pêçandim. Û ez şandim cem Pêxemberê Xwedê (s.), min ew nan jê re (s.) bir, min dît ku Pêxemberê Xwedê (s.) di mizgeftê de rûniştiye û mirov jî digel wî ne. Ez çûme cem wan, vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ebû Telhe tu şandî?" Min got: Belê. Ewî (s.) got: "Ji bo

xwarinê?" Min got: Belê. Pêxemberê Xwedê (s.) ji wanê pê re got: "Rabin." Ew rabûn meşiyan, ez jî li pêşiya wan meşiyam heta ez hatime cem Ebû Telhe (r.) û min ev yeka jê re got. Ewî jî ji jina xwe re got: Ya Ummu Suleym! Vaye Pêxemberê Xwedê (s.) digel însanan hatin, ka emê vana çawa têr bikin? Ewê got: Xwedê û Pêxemberê wî çêtir dizanin. Li ser vê yekê Ebû Telhe çû pêşberiya Pêxemberê Xwedê (s.) ve. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) digel Ebû Telhe hatin û her du ketin hundirê malê. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ya Ummu Suleym, ka li cem we çi heye, bînin." Ewê jî ew nan anî, Pêxemberê Xwedê (s.) emir kir, nan hate hûrkirin. Ummu Suleymê 'eyarê rûn gifaşt û ew xiste pêxwarin. Paşê Pêxemberê Xwedê (s.) jî li ser wê, tişta ku Xwedê hezkiriye xwend (yanî duaya bereketê xwend). Paşê got: "Îzna deh mirovan bide." Wî jî îzna wan da. Ewan deh mirovan têr xwarin û derketin. Paşê got: "Îzna deh mirovan bide." Wî jî îzna wan de. Ewan deh mirovan xwarin û derketin. Paşê dîsa got: "Îzna deh mirovan bide." Heta komê hemûyî xwarin û têr bûn. Kom, heftê û yan jî heştê meriv bûn. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayeteke dîtir de: Hema deh meriv diketine hundir û deh meriv jî ji hundir derdiketin heta ji wan tu kes nema, miheqeq hemû ketine hundir û xwarin heta têr bûn. Piştre ew sifre berev kir, herwekî ew dest lê neketiye wextê jê hatiye xwarin bû.

Di rîwayeteke dîtir de: Ewan deho deho xwarin. Heta heştê meriv bi vî awayî têr bûn. Paşê Pêxemberê Xwedê (s.) û malbata Ebû Telhe xwarin, hê jî xwarin li ber wana ma.

Di rîwayeteke dîtir de: Xwarina têra cîranê wan bike, ji ber wan ma.

Di rîwayeteke ji Enes (r.) de jî dibêje: Rojekê ez hatim cem Pêxemberê Xwedê (s.) min dît ku ew digel sehabên xwe rûniştiye û bi piştikê zikê xwe girêdaye. Vêca min ji hinek sehabê wî (s.) re got: Pêxemberê Xwedê (s.) çima zikê xwe girêdaye? Wan got: Ji birçîna. Li ser vê yekê ez çûme cem Ebû Telhe, ew mêrê Ummu Suleyme ya keça Melhane bû û min got: Bavo, min Pêxemberê Xwedê (s.) dît ku zikê xwe girêdabû, min jî sedemê vê ya ji hinek sehabiyan pirsî, ewan gotin ji birçîna ye. Li ser vê gotina min Ebû Telhe hate cem dayika min (Ummu Suleyme) û jê re got: Qet tiştek heye? Wê got: Belê, li cem min parçe nan û çend lib jî xurme hene. Heger Pêxemberê Xwedê bitenê were emê bikaribin wî têr bikin, eger yekî din jî digel wî (s.) were wê xwarina me hindik be (têra wan neke). Hedîs hemû zikir kir....

# بَابُ الْقَنَاعَةِ وَالْعَفَافِ
# QINYAT Û ÇAVTÊRÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَمَا مِنْ دَابَّةٍ فِي الأَرْضِ إِلَّا عَلَى اللَّهِ رِزْقُهَا﴾

"Tu heywanê li ser rûyê erdê tuneye ku rizqê wî ne li ser Xweda be."[1] Çi heywanê li ser rûyê erdê bimeşe Xwedê te'ala kefîlê rizqê wan e.

﴿لِلفُقَرَاءِ الَّذِينَ أحْصِرُوا فِي سَبِيلِ الله لَا يَسْتَطِيعُونَ ضَرْباً فِي الأَرْضِ يَحسَبُهُمُ الجَاهِلُ أَغنِياءَ مِنَ التَّعَفُّفِ تعرِفُهُم بِسِيمَاهُم لَا يَسْأَلونَ النَّاسَ إلحَافاً﴾

"Sedeqe ji bona wan kesan e ku wan heyata xwe danîne di rêya Xwedê de, ew nikarin sefera ticaretê bikin ji ber ku ewan bi cîhadê û bi belavkirina dewa heq meşxûl in. Yên bi halê wan nizanin, zen dikin ew maldar in –dewlemend in– ji ber çavtêrbûna wan. Tu wan bi simayê wan dinasî. Ji însanan bêşermî naxwazin."[2]

﴿وَالَّذِينَ إذَا أَنْفَقُوا لَمْ يُسْرِفُوا وَلَمْ يَقْتُرُوا وَكَانَ بَيْنَ ذَلِكَ قَوَاماً﴾

"'Îbadê Rehman ew kes in wextê înfaqê dikin –ji malê xwe dinefiqînin ne îsrafê dikin ne jî timatiyê dikin. Ew di neqeba îsraf û timatiyê de ne. (Yanî î'tidalê muhafeze dikin.)"[3]

﴿وَمَا خَلَقْتُ الجِنَ وَالإِنْسَ إِلَّا لِيَعْبُدونِ ۞ مَا أُرِيدُ مِنْهُمْ مِنْ رِزْقٍ وَمَا أُرِيدُ أنْ يُطعِمُونِ﴾

"Min îns û cin bes ji bo ku îbadetê min bikin (yanî ji bo ku min nas bikin) afirandine. Ez ji wan rizqek naxwazim û ez ji wan naxwazim ku xwarinê bidine min."[4]

٥٢٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَيْسَ الْغِنَى عَنْ كَثْرَةِ الْعَرَضِ، وَلكِنَّ الْغِنَى غِنَى النَّفْسِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1 Hûd, 11/6.
2 Beqere, 2/273.
3 Furqan, 25/67.
4 Zariyat, 51/56-57.

522- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Dewlemendiya rastî, ne pirbûna mal e, dewlemendiya dil e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٢٣- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (قَدْ أَفْلَحَ مَنْ أَسْلَمَ، وَرُزِقَ كَفَافاً، وَقَنَّعَهُ اللَّهُ بِمَا آتَاهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

523- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Miheqeq ew kesê ku bûye misilman xelas bûye, rizqê ku têra wî dike heye û bi wî rizqê ku Xwedê te'ala dayî qinyatê dike." *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٢٤- وَعَنْ حَكِيمِ بْنِ حِزَامٍ ﷺ قَالَ: سَأَلْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَأَعْطَانِي، ثُمَّ سَأَلْتُهُ فَأَعطَانِي، ثُمَّ سَأَلْتُهُ فَأَعْطَانِي، ثُمَّ قَالَ: (يَا حَكِيمُ، إِنَّ هَذَا الْمَالَ خَضِرٌ حُلوٌ، فَمَنْ أَخَذَهُ بِسَخَاوَةِ نَفسٍ بُورِكَ لَهُ فِيهِ، وَمَنْ أَخَذَهُ بِإِشْرَافِ نَفْسٍ لَمْ يُبَارَكْ لَهُ فِيهِ، وَكَانَ كَالَّذِي يَأْكُلُ وَلَا يَشْبَعُ، وَالْيَدُ الْعُلْيَا خَيْرٌ مِنَ الْيَدِ السُّفلَى) قَالَ حَكِيمٌ: فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، وَالَّذِي بَعَثَكَ بِالْحَقِ لَا أَرزَأُ أَحَداً بَعْدَكَ شَيئاً حَتَّى أُفَارِقَ الدُّنْيَا، فَكَانَ أَبُو بَكْرٍ ﷺ يَدْعُو حَكِيماً لِيُعطِيَهُ العَطَاءَ، فَيَأْبَى أَنْ يَقْبَلَ مِنْهُ شَيْئاً، ثُمَّ إِنَّ عُمَرَ ﷺ دَعَاهُ لِيُعطِيَهُ، فَأَبَى أَنْ يَقْبَلَهُ، فَقَالَ: يَا مَعْشَرَ الْمُسْلِمِينَ، أُشْهِدكُمْ عَلَى حَكِيمٍ أَنِّي أَعْرِضُ عَلَيْهِ حَقَّهُ الَّذِي قَسَمَهُ اللَّهُ لَهُ فِي هَذَا الْفَيْءِ فَيَأْبَى أَنْ يَأْخُذَهُ، فَلَمْ يَرْزَأْ حَكِيم أَحَداً مِنَ النَّاسِ بَعْدَ النَّبِيِّ ﷺ حَتَّى تُوُفِّيَ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

524- Ji Hekîmê kurê Hizam (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) (malê dunyayê) xwest, wî jî da min. Paşê min dîsa jê xwest, wî dîsa da min. Paşê min dîsa jê xwest, wî dîsa da min. Paşê jî got: "Hekîm, ev malê hanê dilkêş û şirîn e. Kî ewî malî bi camêriya xwe bigire, ew mal wê ji wî re bereket be. Kî jî bi çavbirçîtî ewî malî bigire, ew mal ji wî re nabe bereket û ew meriv herwekî nexwariye û ne jî têr bûye. Destê jor (yê dayinê) ji destê jêrê çêtir e." Hekîm dibêje, min got: Ya Pêxemberê Xwedê, bi wî Xwedayê ku tu bi heq şandî sond dixwim ku piştî te heta ji dunyayê biqetim ji tu kesî tiştekî nestînim. Vêca Ebû Bekir (r.), gazî Hekîm kir da ku tiştekî bidê, ewî qebûl

nekir. Paşê 'Umer jî gazî wî kir da ku tiştekî bidê, wî dîsa qebûl nekir. Li ser vê yekê 'Umer got: Gelî civata misilmana, ez we derbarê Hekîm de dikim şahid ku ewî heqê wî yê ji vê fey'ê ku Xwedê xistiye para wî didimê lêbelê ew hilnade. Hekîm, piştî Pêxemberê Xwedê (s.) heta wefata xwe ji tu kesî tiştek hilneda. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٢٥- وَعَنْ أَبِي بُرْدَةَ عَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: خَرَجْنَا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي غَزَاةٍ، وَنَحْنُ سِتَّةُ نَفَرٍ بَيْنَنَا بَعِيرٌ نَعْتَقِبُهُ، فَنَقِبَتْ أَقْدَامنَا، ونَقِبَتْ قَدَمِي، وَسَقَطَتْ أَظْفَارِي، فَكُنَّا نَلُفّ عَلَى أَرْجُلِنَا الْخِرَقَ، فَسُمِّيَتْ غَزْوَةَ ذَاتِ الرِّقَاعِ لَمَّا كُنَّا نَعْصِبُ عَلَى أَرْجُلِنَا مِنَ الخِرَقِ، قَالَ أَبُو بُرْدَةَ: فَحَدَّثَ أَبُو مُوسَى بِهَذَا الْحَدِيثِ، ثُمَّ كَرِهَ ذَلِكَ، وَقَالَ: مَا كُنْتُ أَصْنَعُ بِأَنْ أَذْكُرَهُ، قَالَ: كَأَنَّهُ كَرِهَ أَنْ يَكُونَ شَيْئاً مِنْ عَمَلِهِ أَفشَاهُ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

525- Ji Ebû Burdete, Ebû Mûsayê Eş'erî (r.) got: Em digel Pêxemberê Xwedê (s.) çûne herbekê û em şeş mirov bûn. Hêstireke me hebû, em bi dor li wê siwar dibûn. Vêca lingê me kul bûn, lingê min jî kul bû û neynûkê min jê ketin. Vêca me pîne bi lingê xwe dipêçan; ji bo vê yekê ji vê herbê re hate gotin: 'Herba Zatur-riqa'ê. Lewra me lingê xwe bi pîna dipêçan. Ebû Burdete dibêje: Ebû Mûsa ev hedîs zikir kir, paşê jî xweşa wî neçû û got: Ezê çi bikim bi zikirkirina vêya? Rawî dibêje: Qey dilê Ebû Mûsa hilneda ku kar û kiryarê wî pê belav bibe. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٢٦- وَعَنْ عَمْرِو بْنِ تَغْلِبَ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ أُتِيَ بِمَالٍ أَوْ سَبيٍ فَقَسَّمَهُ، فَأَعْطَى رِجَالاً، وتَرَكَ رِجَالاً، فَبَلَغَهُ أَنَّ الَّذِينَ تَرَكَ عَتَبُوا فَحَمِدَ اللَّهَ، ثُمَّ أَثْنَى عَلَيْهِ، ثُمَّ قَالَ: (أَمَّا بَعْد، فَوَاللَّهِ إِنِّي لَأُعْطِي الرَّجُلَ، وَأَدَعُ الرَّجُلَ، وَالَّذِي أَدَع أَحَبُّ إِلَيَّ مِنَ الَّذِي أعْطِي، وَلكِنِّي إِنَّمَا أُعْطِي أَقْوَاماً لِمَا أَرَى فِي قُلُوبِهِمْ مِنَ الْجَزَعِ والْهَلَعِ، وَأَكِلُ أَقْوَاماً إِلَى مَا جَعَلَ الله فِي قُلُوبِهِمْ مِنَ الْغِنَى وَالخَيْرِ، مِنْهُمْ عَمْرُو بْنُ تَغْلِبَ) قَالَ عَمْرو بْنُ تَغْلِبَ: فَوَاللَّهِ مَا أُحِبُّ أَنَّ لِي بِكَلِمَةِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ حُمرَ النَّعَم. رَوَاهُ البُخَارِي.

526- Ji 'Emrê kurê Texlib (r.) hatiye rîwayetkirin ku ji Pêxemberê Xwedê

(s.) re hinek mal û yan jî hinek êsîr anîn. Ewî (s.) ew mal û yan jî ew êsîr pareve kir, da hinek mirovan û neda hineka. Vêca pê hesiya ku ew mirovê tiştek hilnedane lomê lê dikin. Li ser vê yekê Pêxember (s.) hemdê Xwedê kir, sena li ser wî da û paşê jî got: "Bi sond, ez didime hinek merivan û hinekan jî dihêlim. Bes ew mirovê ku ez wî bêpar dihêlim hezjêkertir e li cem min ji wî yê ku ez didimê. Lêbelê ez didime hinek mirovan ji ber ku ez dizanim di dilê wan de bêbatî û bêhntengî heye. Ez hinek mirovan jî hewalê bal Xwedê te'ala ve dikim ji ber ku Xwedê çavtêrî û xêrxwazî di dilê wan bi cih kiriye. Yek ji wan jî 'Emrê kurê Texlib e." Emrê kurê Texlib dibêje: Bi sond, gotineke Pêxemberê Xwedê (s.) derbarê min de hezjêkertir e li cem min ji hêstirên sor. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٢٧- وَعَنْ حَكِيمِ بْنِ حِزَامٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (الْيَدُ الْعُلْيَا خَيْرٌ مِنَ الْيَدِ السُّفْلَى، وَابْدَأْ بِمَنْ تَعُولُ، وَخَيْرُ الصَّدَقَةِ عَنْ ظَهْرِ غِنىً، وَمَنْ يَسْتَعْفِفْ يُعِفهُ الله، وَمَنْ يَسْتَغْنِ يُغْنِهِ الله. رَوَاهُ البُخَارِي.

527- Ji Hekîmê kurê Hizam (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Destê jorê çêtir e ji destê jêrê. Di dayinê de bi wî kesê ku nefeqa wî li ser te ye destpê bike. Çêtirtirê sedeqa ew e ku mirovan dewlemend dike. Kî xwe ji xwestinê biparêze Xwedê jî dê ewî biparêze û kî çavtêriyê bike Xwedê jî dê ewî çavtêr bike." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٢٨- وَعَنْ أَبِي سُفْيَانَ صَخْرِ بْنِ حَرْبٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تُلْحِفُوا فِي الْمَسْأَلَةِ، فوَاللَّهِ لَا يَسْأَلُنِي أَحَدٌ مِنْكُمْ شَيْئاً، فَتُخرِجَ لَهُ مَسأَلَتُهُ مِنِّي شَيْئاً وَأَنا لَهُ كَارِهٌ، فَيُبَارَكَ لهُ فِيمَا أَعْطَيْتُهُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

528- Ji Ebû Sufyan Sexrê kurê Herb (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Di xwestinê de israr nekin. Bi sond, yek ji we tiştekî ji min bixwaze û ez bê dilê xwe daxwaza wî bi cih bînim tiştê ku min dayê xwedanbereket nabe." *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٢٩- وَعَنْ أَبِي عَبْدِ الرَّحْمَنِ عَوْف بْنِ مَالِك الأَشْجَعِيِّ ﷺ قَالَ: كُنَّا عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ تِسْعَةً أَوْ ثَمانِيَةً أَوْ سَبْعَةً، فَقَالَ: (أَلَا تُبَايِعُونَ رَسُولَ الله؟) وَكُنَّا حَدِيثِي عَهْدٍ بِبَيْعَةٍ،

فَقُلْنَا: قَدْ بَايَعنَاكَ يَا رَسُولَ الله، ثُمَّ قَالَ: (أَلَا تُبَايِعُونَ رَسُولَ الله؟) فَبَسَطْنا أَيْدِينَا وَقُلْنَا: قَدْ بَايَعْنَاكَ يَا رَسُولَ الله، فَعَلَامَ نُبَايِعكَ؟ قَالَ: (أَنْ تَعْبُدُوا اللّهَ وَلَا تُشْرِكُوا بِهِ شَيْئاً، وَالصَّلَوَاتِ الخَمْسِ وَتُطِيعوا اللّهَ)، وَأَسَرَّ كَلِمَة خَفِيَّةً: (وَلَا تَسْأَلُوا النَّاسَ شَيْئاً) فَلَقَدْ رَأَيْتُ بَعْضَ أُولئِكَ النَّفَرِ يَسْقُطُ سَوْطُ أَحَدِهِمْ فَمَا يَسْأَلُ أَحَداً يُنَاوِلُهُ إِيّاه. رَوَاهُ مُسْلِمْ.

529- Ji Ebû ‘Ebdurrehman ‘Ewfê kurê Malik Eşce‘î (r.), got: Em li cem Pêxemberê Xwedê (s.) neh, heşt û yan jî heft meriv bûn. Ewî (s.) got: “Hûn bey‘etê bi Pêxemberê Xwedê (s.) re nakin?” Ya rastî me jî hê nû pê re bey‘et kiribû. Me got: Ya Pêxemberê Xwedê, me bey‘et bi te re kiriye. Îcar ewî (s.) got: “Hûn bey‘etê bi Pêxemberê Xwedê (s.) re nakin?” Êdî me destê xwe dirêjkir û me got: Ya Pêxemberê Xwedê, me bey‘et bi te re kiriye, (cara dudiyan) em li ser çi bey‘etê bi te re bikin? Got: “Li ser vê ku hûn ji Xwedê re îbadetê bikin, ji wî re hevbeşan/şirîkan çênekin, pênc wext nimêj bikin, îta‘eta ûlul-emra bikin û hêdîka jî ev gotina got: Hûn tiştekî ji tu kesî nexwazin.” Rawî dibêje: Min hinek ji van merivan dît, qemçûrê wan jî dikete erdê ji tu kesî nedixwestin ku ewî hilde bide wan. *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٣٠- وَعَنْ إِبْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (لَا تَزَالُ المَسْأَلَةُ بِأَحَدِكُم حَتَّى يَلْقَى الله تَعَالَى وَلَيْسَ فِي وَجْهِه مُزْعَةُ لَحم). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمْ.

530- Ji Îbnu ‘Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: “Xwestin/parsekî, mirova tîne wê derecê ku di roja qiyametê de ew meriv tê pêşberî Xwedê ku di rûyê wî de goşt tune.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٣١- وَعَنْهُ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ وَهُوَ عَلَى المِنْبَرِ، وَذَكَرَ الصَّدَقَةَ وَالتَّعَفّفَ عَنِ المَسَأَلَةِ: (الْيَد العُلْيَا خَيرٌ مِنَ اليَدِ الْسُفْلى، وَاليَدُ العُليَا هِيَ المُنْفِقَةُ، وَالسُّفْلَى هِيَ السَّائِلَةُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمْ.

531- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) li ser mînberê behsa sedeqê û xwe parastina ji parsekiyê kir û wiha got: “Destê jor çêtire ji destê jêr. Destê jor ew destê ku dayinê dike, destê jêr jî ew destê ku parsê dike.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٣٢- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (مَنْ سَأَلَ النَاسَ تكثُّراً، فَإِنَّمَا يَسْأَلُ جَمْراً فَلْيَسْتَقِلَّ أَوْ فَلِيَسْتكثِرْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

532- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ew merivê ku ji bo komkirinê ji însanan parsê dike, ew ancax êgir pars dike; hezkî bila hindik be hezkî bila zehf be." *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٣٣- وَعَنْ سَمُرَةَ بْنِ جُنْدبٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: إِنَّ الْمَسأَلَةَ كَدّ، يَكُدُّ بِهَا الرَّجُلُ وَجْهَهُ، إِلَّا أَنْ يَسْأَلَ الرَّجُلُ سُلْطَاناً أَوْ فِي أَمْرٍ لَا بُدَّ مِنْهُ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

533- Ji Semureyê kurê Cundub (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman parsekî karekî zor e, meriv bi wê rûyê xwe dihincir e; lêbelê meriv eger ji siltan bixwaze û yan jî ji bêgaviyê bixwaze ew mistesna ye." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e û sehîh e.*

٥٣٤- وَعَنْ اِبْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِﷺ: مَنْ أَصَابَتْهُ فَاقَةٌ فَأَنْزَلَهَا بِالنَّاسِ لَمْ تُسَدَّ فَاقَتُهُ، وَمَنْ أَنْزَلَها بِاللَّهِ، فَيُوشِكُ الله لَهُ بِرِزْقٍ عَاجِلٍ أَوْ آجِلٍ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

534- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî feqîrî lê peyda bibe ew jî serî li însanan bide, ihtiyaca wî nayê pêkanîn. Kî jî ji bo haceta xwe lavahiyê ji Xwedê bike hêvî heye ku Xwedê rizqekî niha û yan jî hê de bidiyê." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e û sehîh e.*

٥٣٥- وَعَنْ ثَوْبَانَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِﷺ: (مَنْ تَكفَّلَ لِي أَنْ لَا يَسْأَلَ النَّاسَ شَيْئاً، وَأَتَكَفَّلُ لَهُ بَالْجَنَةِ؟) فَقُلْتُ: أَنَا، فَكَانَ لَا يَسْأَلُ أَحَداً شَيْئاً. رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

535-Ji Sewban (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî soz bide min ku tiştekî ji însanan nexwaze, ezê jî bibim kefîlê wî yê cennetê?" Rawî dibêje min got: Ez. Vêca ewî (rawî) ji tu kesî tiştek nexwest. *Ebû Dawûd bi senadeke sehîh rîwayet kiriye.*

٥٣٦- وَعَنْ أَبِي بِشْرٍ قَبِيصَةَ بْنِ الْمُخَارِقِ ﷺ قَالَ: تَحَمَّلْتُ حَمَالَةً فَأَتَيْتُ رَسُولَ

  

اللهِ ﷺ أَسْأَلُهُ فِيهَا، فقَالَ: (أَقِمْ حَتَّى تَأْتِيَنَا الصَّدَقَة فَنَأْمُرَ لَكَ بِهَا، ثُمَّ قَالَ: يَا قَبِيصَةُ إنَّ الْمَسألَةَ لَا تَحِلُّ إِلَّا لأَحَدِ ثَلاثَةٍ: (رَجُل تَحَمَّلَ حَمَالَةً، فَحَلَّتْ لَهُ المَسْأَلَةُ حَتَّى يُصِيبَهَا، ثُمَّ يُمْسِكُ، وَرَجُلٌ أَصَابَتْهُ جَائِحَةٌ اجْتَاحَتْ مَالَهُ، فَحَلَّتْ لَهُ الْمَسأَلَةُ حَتَّى يُصيبَ قِوَاماً مِنْ عَيشٍ، أَوْ قَالَ: سِدَاداً مِنْ عَيْش، وَرَجُلٌ أَصَابَتْهُ فَاقَةٌ، حَتَّى يَقُولَ ثَلاثَةٌ مِنْ ذَوِي الحِجَى مِنْ قَوْمِهِ: لَقَدْ أَصَابَتْ فُلَاناً فَاقَةٌ، فَحَلَّتْ لَهُ المَسأَلَةُ حَتَّى يُصِيبَ قِوَاماً مِنْ عَيْشٍ، أَوْ قَالَ: سِدَاداً مِنْ عَيْشٍ. فَمَا سِواهُنَّ مِنَ المَسْأَلَةِ يَا قَبِيصَةُ سُحْتٌ، يَأْكُلُهَا صَاحِبُهَا سُحْتاً). رَوَاهُ مُسْلِم.

536- Ji Ebû Bişr Qebîse yê kurê Muxariq (r.), got: Min barekî giran hildabû ser xwe. Vêca ez hatim cem Pêxemberê Xwedê (s.), di vê derbarê de, min daxwaza malê zikatê jê kir. Ewî (s.) got: “Tu rabe here mala xwe, heta malê sedeqê ji me re hat, emê dê parekî jê bidine te.” Paşê jî got: “Ya Qebîse! Bêguman xwestin bes ji bona sê merivan helal e: Merivê ku barekî giran barkiriye (yanî musîbetek ser de hatiye), jê re xwestin heta ji wê musîbetê xelas bibe helal e. Yek jî ew merivê ku afatek di ser de hatiye û malê wî telef kiriye, xwestin ji bona wî jî heta ji bona jîna xwe hinek mal bidest bixe helal e û yek jî ew merivê ku feqîrî û xîzanî lê peyda bûye heta sê merivên bi hiş ji qewmê wî bêjin feqîrî li filan merivî peyda bûye, ji wî re jî xwestin heta ji bona jîna xwe hinek mal bi dest bixe helal e. Ya Qebîse, xwestin ji xeynê vana re heram e, yê ku dixwe jî heramiyê dixwe.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٣٧- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَيْسَ الْمِسْكِينُ الَّذِي يَطُوفُ عَلَى النّاسِ تَرُدُّهُ اللُّقْمَة واللُّقْمَتَانِ، وَالتَّمْرةُ وَالتَّمْرَتَانِ، وَلكِنَّ المِسْكِينَ الَّذِي لَا يَجِدُ غِنىً يُغْنِيهِ، وَلَا يُفْطَنُ لَهُ، فَيُتَصَدَّقَ عَلَيْهِ، وَلَا يَقُومُ فَيَسْأَلَ النَّاسَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

537- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Miskîn ew kesê ku parîk yan du parî yan jî xurmeyek yan du xurme ji ber deriyan vedigerîne nîne. Lêbelê miskînê esîl ew meriv e ku dewlemend nîne, feqîriya wî jî nayê zanîn ku sedeqe lê bê kirin û ew jî xwestinê nake.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ جَوَازِ الأَخْذِ مِنْ غَيْرِ مَسْأَلَة
## HILDANA BÊXWESTIN

٥٣٨- عَنْ سَالِمِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ، عَنْ أَبِيهِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ، عَنْ عُمَرَ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ الله ﷺ يُعْطِينِي الْعَطَاءَ، فَأَقُولُ: أَعْطِهِ مَنْ هُوَ أَفقَرُ إِلَيْهِ مِنِّي، فَقَالَ: (خُذهُ، إِذَا جَاءَكَ مِنْ هَذَا الْمَالِ شَيْءٌ وَأَنْتَ غَيْرُ مُشْرِفٍ وَلَا سَائِلٍ، فَخُذْهُ فَتَمَوَّلَهُ، فَإِنْ شِئتَ كُلْهُ، وَإِنَ شِئْتَ تَصَدَّقَ بِهِ، وَمَا لَا فَلَا تُتْبِعْهُ نَفْسَكَ) قَالَ سَالِمٌ: فَكَانَ عَبدُ الله لَا يَسْأَلُ أَحَداً شَيْئاً، وَلَا يَرُدُّ شَيْئاً أُعْطِيَهُ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

538- Ji Salimê kurê ‘Ebdullahê Îbnu ‘Umer, ewî jî ji bavê xwe ‘Ebdullahê Îbnu ‘Umer (r.) got: Pêxemberê Xwedê (s.) malê extirmê/xenîmetê dide min. Vêca min digot: Tu bide wî kesê ji min feqîrtir e. Ewî (s.) got: “Tu vî malî bêçavavêtin û bêxwestin wextê ji te re hat hilde û bike malê xwe; piştî wê te bive bixwe û te bive jî sedeqe bide, lêbelê tu li pey neçe (û nebe tabi‘ê wê).” Salim dibêje: Êdî ‘Ebdullah tiştek ji tu kesî nexwest û tiştê ku jê re hatibû jî nezivirand. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ الْحَثِّ عَلَى الأَكْلِ مِنْ عَمَلِ يَدِهِ
## XWARINA JI KAR Û KIRYARÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿فَإِذَا قُضِيَتِ الصَّلَاةُ فَانْتَشِرُوا فِي الأَرْضِ وَابْتَغُوا مِنْ فَضْلِ اللَّهِ﴾

“Wextê nimêja cum‘ê/înê hate kirin hûn li ser rûyê erdê belav bibin ji fezl û kerema Xwedê nesîbê xwe bigrin.”[1]

٥٣٩- عَنْ أَبِي عَبْدِ اللَّهِ الزُّبَيْرِ بْنِ الْعَوَّامِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُول الله ﷺ: (لَأَنْ يَأْخُذَ أَحَدُكُمْ أَحْبُلَهُ، ثُمَّ يَأْتِيَ الْجَبَلَ، فَيَأْتِيَ بِحُزْمَةٍ مِنْ حَطَبٍ عَلَى ظَهْرِهِ فَيَبِيعَهَا، فَيَكُفَّ الله

1 Cum‘e, 62/10.

بِهَا وَجْهَه، خَيْرٌ لَهُ مِنْ أَنْ يَسْأَلَ النَّاسَ، أَعْطوْهُ أَوْ مَنَعُوهُ). رَوَاهُ البُخَارِي.

539- Ji Ebû ‘Ebdullah Zubeyrê kurê ‘Ewwam ((r.) hatiye), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Yek ji we werîsê xwe hilde, paşê here çiyê pê gurzek dar bi pişta xwe bîne û ji bo xwe bifiroşe vêca Xwedê te‘ala jî bi vêya ewî rûreş neke çêtirtire ji wî re ku ji însanan bixwaze û ew jî bidinê û yan nedinê.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٤٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لِأَنْ يَحْتَطِبَ أَحَدُكُمْ حُزْمَةً عَلَى ظَهْرِه خَيْرٌ لَهُ مِنْ أَنْ يَسأَلَ أَحَداً، فَيُعْطِيَهُ أَوْ يَمْنَعَهُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

540- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Dar barkirina yekî ji we li ser pişta xwe çêtirtire ji wî re ku xwestinê ji yekî bike û ew jî bidiyê an nediyê.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٤١- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (كَانَ دَاوُدُ ﷺ لَا يَأْكُلُ إِلَّا مِنْ عَمَلِ يَدِهِ). رَوَاهُ البُخَارِي.

541-Dîsa ji wî (r.), ji Pêxemberê (s.) gotiye: “Dawûd Pêxember (s.) bes ji keda destê xwe dixwar.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٤٢-وَعَنْهُ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (كَانَ زَكَرِيَّا ﷺ نجَّاراً). رَوَاهُ مُسْلِم.

542- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Zekeriya Pêxember (s.) xerat bû.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٤٣- وَعَنْ الْمِقْدامِ بْنِ مَعْدِ يَكْرِبَ ﷺ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَا أَكَلَ أَحَدٌ طَعَاماً قَطُّ خَيْراً مِنْ أَنْ يَأْكُلَ مِنْ عَمَلِ يَدَيْهِ، وَإِنَّ نَبِيَّ الله دَاوُدَ ﷺ كَانْ يَأْكُلُ مِنْ عَمَلِ يَدِهِ). رَوَاهُ البُخَارِي.

543- Ji Mîqdadê kurê Me‘dîkerib (r.), Pêxember (s.) got: “Kesî tu car xwarineke ji xwarina keda destê xwe çêtirtir nexwariye. Pêxemberê Xwedê Dawûd (s.) jî ji keda destê xwe dixwar.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ الْكَرَمِ وَالْجُودِ وَالإِنْفَاقِ فِي وجُوهِ الْخَيْرِ
## CAMÊRÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَمَا أَنْفَقْتُمْ مِنْ شَيْءٍ فَهُوَ يُخْلِفُهُ﴾

"Çi tiştê hûn înfaq bikin wê Xwedê te'ala şûna wê dagire."[1]

﴿وَمَا تُنْفِقُوا مِنْ خَيْرٍ فَلِأَنْفُسِكُمْ وَمَا تُنْفِقُونَ إِلَّا ابْتِغَاءَ وَجْهِ اللَّهِ وَمَا تُنْفِقُوا مِنْ خَيْرٍ يُوَفَّ إِلَيْكُمْ وَأَنْتُمْ لَا تُظْلَمُونَ﴾

"Tiştê hûn ji xêrê înfaq bikin sewaba wê ji bona we ye. Înfaqa we jî –dayina we– bes bila ji bona wechê Xwedê be, ji bo razîbîna wî be. Hûn di xêrê de çi bidin wê Xwedê sewab û mukafata wê bi temamî bide we neheqî jî li we nayê kirin."[2]

﴿وَمَا تُنْفِقُوا مِنْ خَيْرٍ فَإِنَّ اللَّهَ بِهِ عَلِيمٌ﴾

"Tiştê hûn ji xêrê didin, Xwedê te'ala pê agahdar e."[3]

٥٤٤- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَا حَسَدَ إِلَّا فِي اثْنَتَيْنِ: رَجُلٌ آتَاهُ اللَّهُ مَالاً، فَسَلَّطَهُ عَلَى هَلَكَتِهِ فِي الْحَقِ، وَرَجُلٌ آتَاهُ اللَّهُ حِكْمَةً، فَهُوَ يَقْضِي بِهَا وَيُعَلِّمُهَا).

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

544- Ji kurê Mes'ûd (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Bes di du tiştan de çavreşî/dexesî dirust e: Merivê ku Xwedê te'ala mal dabiyê, ew jî wî malî di rêya heqiyê de dimezixîne û yek jî ew merivê ku Xwedê hîkmet û zanîn kiribe para wî û vêca ew jî bi wê daraz/hukim dide û ewê hînî însanan dike."

٥٤٥- وَعَنْه قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: أَيُّكُمْ مَالُ وَارِثِهِ أَحَبُّ إِلَيْهِ مِنْ مَالِهِ؟) قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ، مَا مِنَّا أَحَدٌ إِلَّا مَالُه أَحَبُّ إِلَيْهِ، قَالَ: (فَإِنَّ مَالَه مَا قَدَّمَ وَمَالَ وَارِثِهِ مَا أَخَّرَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1 Sebe, 34/39.
2 Beqere, 2/272.
3 Beqere, 2/273.

545- Dîsa ji wî (s.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî ji we, li cem dilê wî, malê warisê wî ji yê wî şêrîntir e? Sehabiya gotin: Ya Pêxemberê Xwedê, ji me tu kes tuneye ku malê warisê wî ji yê wî şêrîntir be. Ewî (s.) got: Bêguman malê kes, ew e yê ku wî di pêşiya xwe de şandiye û malê warisê wî jî, ew e yê ku li paş xwe hiştiye." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٤٦- وَعَنْ عَدِيِّ بْنِ حَاتِمٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (اتَّقُوا النَّارَ وَلَوْ بِشِقِّ تَمْرَةٍ).

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

546- Ji 'Ediyyê kurê Hatim (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn xwe bi qetek xurme be jî ji êgir biparêzin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٤٧- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: مَا سُئِلَ رَسُولُ الله ﷺ شَيْئاً قَطُّ فقَالَ: لَا. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

547- Ji Cabir (r.), got: Ji Pêxemberê Xwedê (s.) tu car tiştek nehatiye xwestin ku ewî (s.) gotibe na." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٤٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا مِنْ يَوم يُصْبِحُ الْعِبَادُ فِيهِ إِلَّا مَلَكَانِ يَنْزِلَانِ، فَيَقُولُ أَحَدُهُمَا: اللَّهُمَّ أَعْطِ مُنْفِقاً خَلَفاً، وَيَقُولُ الآخَرُ: اللَّهُمَّ أَعْطِ مُمْسِكاً تَلَفاً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

548-Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Her sibeha ku bende derbas dikin miheqeq du milyaket têne xwarê; yek ji wan dibêje: "Xwedê, tu ciyê malê wî mirovê ku di rêya te de malê xwe dimezixîne dagire" û ewê din jî dibêje: "Xwedê, tu malê wî yê ku malê xwe digire (yanî di rêya te de namezixîne) telef bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٤٩- وَعَنْهُ: أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (قَالَ اللَّهُ تَعَالَى: أَنْفِقْ يَا بْنَ آدَمَ يُنْفَقْ عَلَيْكَ).

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

549-Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedayê te'ala gotiye: Gelî Benî Adem, (di rêya Xwedê de) bimezixîne ku ew (c.c.) jî ji te re bimezixîne." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٥٠- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ: أَنَّ رَجُلاً سَأَلَ رَسُولَ الله ﷺ: أَيُّ الإِسْلَامِ خَيْرٌ؟ قَالَ: (تُطْعِمُ الطَّعَامَ، وَتَقْرَأُ السَّلَامَ عَلَى مَنْ عَرَفْتَ وَمَنْ لَمْ تَعْرِفْ).

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

550- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.) hatiye rîwayetkirin ku miroveki ji Pêxemberê Xwedê (s.) pirsî ku ka kîjan kar û kiryarê Îslamê baştir e? Ewî (s.) got: "Tu xwarinê bidî xwarin û tu selamê bidî însanan, çi tu nas bikî çi jî nas nekî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٥١- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (أَرْبَعُونَ خَصْلَةً أَعْلَاهَا مَنِيحَةُ العَنْزِ، مَا مِنْ عَامِلٍ يَعْمَلُ بِخَصْلَةٍ مِنْهَا رَجَاءَ ثَوَابِهَا وَتَصْدِيقَ مَوْعُودِهَا إِلَّا أَدْخَلَهُ الله تَعَالَى بِهَا الجَنَّةَ).

رَوَاهُ الْبُخَارِي.

551- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Çil xeslet –tiştên baş– hene mezintirîna wan ew e ku bizina doşaniyê seba bidoşin emanetî bide. Kîjan mirovê ku bi hêviya xêra wê û bi baweriya we'da wê yekî ji wan pêk bîne wê Xwedê te'ala wî kesî daxilî behiştê bike." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٥٢- وَعَنْ أَبِي أُمَامَةَ صُدَيِّ بْنِ عَجْلَانَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (يَا بْنَ آدَمَ إِنَّكَ أَنْ تَبْذُلَ الفَضْلَ خَيْرٌ لَكَ، وَأَنْ تُمْسِكَهُ شَرٌّ لَكَ، وَلَا تُلامُ عَلَى كَفَافٍ، وَأبْدأْ بِمَنْ تَعُولُ، وَالْيَدُ الْعُلْيَا خَيْرٌ مِنَ الْيَدِ السُّفْلَى). رَوَاهُ مُسْلِم.

552- Ji Ebû Umame Sudeyyê kurê 'Eclan (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kurê Adem! Heger tu malê xwe yê zêde di rêya Xwedê de bimezixînî ji te re çêtir e. Heger tu ewî bigrî ji bo te xerab e. Ji bo malê te yê têra te bike lome li te nayê kirin. Tu bi ew kesê ku nefeqa wî li ser te wacib e dest bi dayinê bike. Destê jor ji destê jêrê çêtir e." *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٥٣- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: مَا سُئِلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَلَى الإِسْلَامِ شَيْئاً إِلَّا أَعْطَاهُ، وَلَقَد جَاءَهُ رَجُلٌ، فَأَعْطَاهُ غَنَماً بَيْنَ جَبَلَيْنِ، فَرَجَعَ إِلَى قَوْمِهِ فَقَالَ: يَا قَوْمِ أَسْلِمُوا، فَإِنَّ مُحَمَّداً يُعْطِي عَطَاءَ مَنْ لَا يَخْشَى الْفَقْرَ، وَإِنْ كَانَ الرَّجُلُ لَيُسْلِمُ مَا يُرِيدُ إِلَّا الدُّنْيَا، فَمَا يَلْبَثُ إِلَّا

يَسِيراً حَتَّى يَكُونَ الإِسْلَامُ أَحَبَّ إِلَيْهِ مِنَ الدُّنْيَا وَمَا عَلَيْهَا. رَوَاهُ مُسْلِم.

553- Ji Enes (r.), got: Tiştê bi navê Îslamiyetê ji Pêxemberê Xwedê (s.) hatiye xwestin wî (s.) miheqeq daye. Rojekê mirovek hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û ewî (s.) birek pezê ku navbera du çiyan dadigirt da wî mirovî. Wextê ew mirov zivirî bal qewmê xwe ve got: Gelî miletê min! Misilman bibin. Lewra Muhemmed wekî wî merivê ku ji feqîriyê natirse mal belav dike. Lêbelê ew mirovê ku ji bo malê dunyayê misilman dibe, di demeke kin de Îslam li cem wî ji dunyayê û ji tiştê li ser rûyê dunyayê hezjêkertir dibe." *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٥٤- وَعَنْ عُمَرَ ﷺ قَالَ: قَسَمَ رَسُولُ الله ﷺ قَسْماً، فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ الله لَغَيْرِ هَؤُلَاءِ كَانُوا أَحَقَّ بِهِ مِنْهُم قَالَ: (إِنَّهُمْ خَيَّرُونِي أَنْ يَسْأَلُونِي بِالْفُحْشِ فأُعْطِيهُمْ، أَوْ يُبَخِّلُونِي، ولَسْتُ بِبَاخِلٍ). رَوَاهُ مُسْلِم.

554- Ji 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) malê xenîmetê parve dikir. Min got: Ya Pêxemberê Xwedê, evanê bêpar ji vanê bipar çêtir in. Ewî (s.) got: "Ewan ez muxeyyer hiştim, wanê bi îsrar ji min bixwazin û ezê jî bidime wan, yan jî (ez malê xenîmetê nadime wan) ewê min tima bihesibînin û ya rastî ez jî ne tima me." *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٥٥- وَعَنْ جُبَيْرِ بنِ مُطْعِمٍ ﷺ قَالَ: بَيْنَمَا هُوَ يَسِيرُ مَعَ النَّبِيِّ ﷺ مَقْفَلَهُ مِن حُنيْنٍ، فَعَلِقَهُ الأَعْرَابُ يَسْأَلُونَهُ، حَتَّى اضْطَرُّوهُ إِلَى سَمُرَةٍ، فَخَطِفَتْ رِدَاءهُ، فَوَقَفَ النَّبِيُّ ﷺ فَقَالَ: (أَعْطُونِي رِدَائِي، فَلَوْ كَانَ لِي عَدَدُ هَذِهِ العِضَاه نَعَماً، لَقَسَمْتُهُ بَيْنَكُمْ، ثُمَّ لَا تَجِدُونِي بَخِيلاً وَلَا كَذَّاباً وَلَا جَبَاناً). رَوَاهُ البُخَارِي.

555- Ji Cubeyrê kurê Mut'im (r.) hatiye rîwayetkirin ku wiha gotiye: Wextê ez digel Pêxemberê Xwedê (s.) ji herba Hûneynê dimeşiyam min dît Bedewî hatin malê xenîmetê jê xwestin, heta ew dehfandin birin binê dara Semureyê asê kirin, kurkê wî (s.) bi darê ve ma dardakirî. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) hêstira xwe da sekinandinê û got: "Kurkê min bidine min. Heger bi qasî jimara evan daran hêstirên min hebana minê di navbera we de parve bikira û paşê jî we ez tima, derewker û tirsonek hesab nedikirim." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٥٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَا نَقَصَتْ صَدَقَةٌ مِنْ مَالٍ، وَمَا زَادَ اللهُ عَبْداً بِعَفْوٍ إِلَّا عِزّاً، وَمَا تَوَاضَعَ أَحَدٌ لِلهِ إِلَّا رَفَعَهُ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ). رَوَاهُ مُسْلِم.

556- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Sedeqe mal kêm nake. Xwedê te‘ala bi sedem bexşandin û ‘efûya bendê xwe ancax ‘îzzet û şerefa wî zêde dike. Kî xwe ji bo Xwedê bişkîne, Xwedê ‘ezze we celle miheqeq dê ewî bilind bike.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٥٧- وَعَنْ أَبِي كَبْشَةَ عُمَرَ بْنِ سَعْدٍ الأَنْمَارِيِّ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللهِ ﷺ يَقُولُ: (ثَلَاثَةٌ أُقْسِمُ عَلَيْهِنَّ وَأُحَدِّثُكُم حَدِيثاً فَاحْفَظُوهُ: مَا نَقَصَ مَالُ عَبْدٍ مِنْ صَدَقَةٍ، وَلَا ظُلِمَ عَبْدٌ مَظْلِمَةً صَبَرَ عَلَيْهَا إِلَا زَادَهُ اللَّهُ عِزّاً، وَلَا فَتَحَ عَبْدٌ بَابَ مَسْأَلَةٍ إِلَّا فَتَحَ الله عَلَيْهِ بَابَ فَقْرٍ) أَوْ كَلِمَةً نَحْوَهَا، وَأُحَدِّثُكُم حَدِيثاً فَاحْفَظُوهُ قَالَ: (إِنَّمَا الدُّنْيَا لِأَرْبَعَةِ نَفَرٍ: عَبْدٌ رَزَقَهُ اللَّهُ مَالاً وَعِلْماً، فَهُوَ يَتَّقِي فِيهِ رَبَّهُ، وَيَصِلُ فِيهِ رَحِمَهُ، وَيَعْلَمُ لِلهِ فِيهِ حَقّاً، فَهَذَا بِأَفْضَلِ الْمَنَازِلِ، وَعَبْدٌ رَزَقَهُ اللَّهُ عِلْماً، وَلَمْ يَرْزُقْهُ مَالاً، فَهُوَ صَادِقُ النِّيَّةِ يَقُولُ: لَوْ أَنَّ لِي مَالاً لَعَمِلْتُ بِعَمَلِ فُلَانٍ، فَهُوَ بِنِيَّتِهِ، فَأَجْرُهُمَا سَوَاءٌ، وَعَبْدٌ رَزَقَهُ اللَّهُ مَالاً، وَلَمْ يَرْزُقْهُ عِلْماً، فَهُوَ يَخْبِطُ فِي مَالِهِ بِغَيْرِ عِلْمٍ، لَا يَتَّقِي فِيهِ رَبَّهُ، وَلَا يَصِلُ فِيهِ رَحِمَهُ، وَلَا يَعْلَمُ لِلهِ فِيهِ حَقّاً، فَهَذَا بِأَخْبَثِ الْمَنَازِلِ. وَعَبْدٌ لَمْ يَرْزُقْهُ اللَّهُ مَالاً وَلَا عِلْماً، فَهُوَ يَقُولُ: لَوْ أَنَّ لِي مَالاً لَعَمِلْتُ فِيهِ بِعَمَلِ فُلَانٍ، فَهُوَ نِيَّتُهُ، فَوِزْرُهُما سَوَاءٌ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

557- Ji Ebû Kebşe ‘Emrê kurê Se‘dê Enmarî (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye ku wiha digot: Sê xeslet hene, ezê di derbarê wan de bi sond ji we re gotinekê bêjim, hûn wê ji ber bikin: Malê ‘ebd/bende, bi sedeqê kêm nabe, mirovek zilm lê werekirin û ew jî sebir bike dê Xwedê te‘ala ‘îzzet û şerefa wî zêde bike û ew mirovê ku deriyê parsekiyê veke dê Xwedê te‘ala ji wî re deriyê feqîriyê veke. (Yan jî gotineke mîna vê got.) Dîsa ezê ji we re gotinekê bêjim, hûn wê ji ber bikin: Dunya ancax ji bo çar mirovan e: ‘Ebdê ku Xwedê mal û ‘ilim dayê

û ew jî di derbarê wî malî de ji Xwedê ditirse, li lêzim û eqrebayê xwe miqate dibe û di vî derbarî de heqê Xwedê jî dizane. Eva paya bilindtir e. Yek jî ew 'ebdê ku Xwedê te'ala ilim xistiye para wî lêbelê mal nedayê û ew jî xwedanê niyeteke dirust e û dibêje: Heger malê min jî hebaya minê jî wekî kar û kiryarê filan kesî bikira û niyeta wî jî ev e. Vêca xêra her duyan jî wekî hevdu ye. Yek jî ew 'ebdê ku Xwedê te'ala mal dayê lêbelê 'ilim û zanebûn nedayê. Vêca ew mirov malê xwe bê zanebûn dimezixîne û di derbarê wî malî de ji Xwedê natirse, li lêzim û eqrebayê xwe miqate nabe û di vî derbarî de heqê Xwedê jî nizane. Eva paya berjêrtir e. Yek jî ew 'ebdê ku Xwedê ne mal ne jî ilim xistiye para wî. Vêca ew dibêje: Heger malê min jî wekî yê filan kesê hebûya minê jî wekî kar û kiryarê wî bikira û niyeta wî jî ev e. Vêca gunehê her duyan jî wekî hevdu ye." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e û sehîh e.*

٥٥٨- وَعَنِ عَائِشَةَ ﷺ أَنَّهُمْ ذَبَحُوا شَاةً، فقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (مَا بقِيَ مِنْها؟) قَالَتْ: مَا بَقِيَ مِنْهَا إِلَّا كَتِفُهَا، قَالَ: بَقِيَ (كُلُّهَا غَيْرَ كَتِفِهَا) رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

558- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku wana pezek serjêkirin. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu goşt jê maye?" ('Aîşe) got: Pîlê/milê wê bi tenê maye. Ewî (s.) got: "Ji xeynê pîlê wê hemû maye." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e û sehîh e.*

٥٥٩- وَعَنْ أَسْمَاءَ بِنْتِ أَبِي بَكْرٍ الصِّدِّيق ﷺ قَالَتْ: قَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تُوكِي فَيُوكَى عَلَيكِ).

وَفِي رِوَايَةٍ: (أَنْفِقِي أَوْ انفَحِي، أَوْ انْضِحِي، وَلَا تُحْصِي فَيُحْصِي الله عَلَيْكِ، وَلَا تُوعِي فَيُوعِ الله عَلَيْكِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

559- Ji Esmaya keça Ebû Bekirê Siddîq (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Tu devê kîsik girênede ku li ser te jî bê girêdan."

Di rîwayetekê de: Tu bimezixîne lêbelê nehijmêre heta ku Xwedê jî bêjimar bide te. Malê xwe di kîlerê de negire heta ku rizqê te jî bê girtin. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٦٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَثَلُ البَخِيلِ وَالْمُنْفِقِ، كَمَثَلِ رَجُلَيْنِ عَلَيْهِمَا جُنَّتَانِ مِنْ حَدِيدٍ مِنْ ثُدِيِّهِمَا إِلَى تَرَاقِيهِمَا، فَأَمَّا الْمُنْفِقُ، فَلَا يُنْفِقُ إِلَّا سَبَغَتْ، أَوْ وَفَرَتْ عَلَى جِلْدِهِ حَتَّى تُخْفِيَ بَنَانَهُ، وَتَعْفُوَ أَثَرَهُ، وَأَمَّا الْبَخِيلُ، فَلَا يُرِيدُ أَنْ يُنْفِقَ شَيْئاً إِلَّا لَزِقَتْ كُلُّ حَلْقَةٍ مَكَانَهَا، فَهُوَ يُوَسِّعُهَا فَلا تَتَّسِعُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

560- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye, wiha digot: “Mesela mirovê kunoj/bexîl û yê merd wekî mesela du mirovan e ku her yek ji wan ji memkê xwe heta stûyê xwe çekê hesin (zirx) vegirtine. Vêca heçîka mirovê merd malê xwe wextê di rêya Xwedê de dimezixîne miheqeq ew rizqê wî fireh û dirêj dibe heta serê pêçiyên lingê wî jî dinixumîne û dewsa wî jî winda dike. Mirovê bexîl/tima jî eger bixwaze ku tiştekî bimezixîne jî her heleqek bi ciyê xwe ve dizeliqe, ew dixwaze wê fireh bike lêbelê ew fireh nabe.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٦١- وعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ تَصَدَّقَ بِعَدْلِ تَمْرَةٍ مِنْ كَسْبٍ طَيِّبٍ، وَلَا يَقْبَلُ اللَّهُ إِلَّا الطَّيِّبَ، فَإِنَّ اللَّهَ يَقْبَلُهَا بِيَمِينِهِ، ثُمَّ يُرَبِّيهَا لِصَاحِبِهَا كَمَا يُرَبِّي أَحَدُكُمْ فَلُوَّهُ حَتَّى تَكُونَ مِثْلَ الْجَبَلِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

561- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kî qasî xurmeyekê ji malê xwe yê helal, ku Xwedê jî ancax malê helal qebûl dike, sedeqe bide bêguman Xweda te‘ala qebûl dike paşê jî, çawa yek ji we dehşika xwe mezin dike, ew jî (c.c.) wê sedeqê ji xwedanê wê re xweyî û mezin dike heta dibe wekî çiya.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٦٢- وَعَنْهُ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (بَيْنَمَا رَجُلٌ يَمْشِي بِفَلَاةٍ مِنَ الأَرْضِ، فَسَمِعَ صَوْتاً فِي سَحَابَةٍ: اسْقِ حَدِيقَةَ فُلَانٍ، فَتَنَحَّى ذَلِكَ السَّحَابُ فَأَفْرَغَ مَاءهُ فِي حَرَّةٍ، فَإِذَا شَرْجَةٌ مِنْ تِلْكَ الشِّرَاجِ قَدِ اسْتَوعَبَتْ ذَلِكَ الْمَاءَ كُلَّهُ، فَتَتَبَّعَ الْمَاءَ، فَإِذَا رَجُلٌ قَائِمٌ فِي حَدِيقَتِهِ يُحَوِّلُ الْمَاءَ بِمِسْحَاتِهِ، فَقَالَ لَهُ: يَا عَبْدَ الله مَا اسْمُكَ؟ قَالَ: فُلَانٌ لِلاسْمِ الَّذِي سَمِعَ فِي السَّحَابَةِ، فَقَالَ لَهُ: يَا عَبْدَ الله لِمَ تَسْأَلُنِي عَنِ اسْمِي؟ فَقَالَ: إِنِّي سَمِعْتُ صَوْتاً فِي

السَّحَابِ الَّذِي هَذَا مَاؤُهُ يقُولُ: اِسْقِ حَدِيقَةَ فُلَانٍ لِاسْمِكَ، فَمَا تَصْنَعُ فِيهَا؟ فَقَالَ: أَمَّا إِذْ قُلْتَ هَذَا، فَإِنِّي أَنْظُرُ إِلَى مَا يَخْرُجُ مِنْهَا، فَأَتَصَدَّقُ بِثُلُثِه، وآكُلُ أَنَا وَعِيَالِي ثُلُثاً، وأَرُدُّ فِيهَا ثُلُثَهُ». رَوَاهُ مُسْلِم.

562- Dîsa ji wî (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Mirovek wextekê di çolekê de dimeşiya û di wê demê de ji ewran ev dengê hanê bihîst: 'Tu baxçê filan kesî av bide.' Paşê jî ewî ewrî ava xwe li ser berdelanekî (erdê bi kevir) valakir û ceweke avê ew av hemû kom kir. Ew mirov li pey wê avê çû, dît ku mirovek li ser piyan di nav baxçê xwe de wê avê bi bêra xwe digerîne. Jê re got: Ya 'ebdê Xwedê, navê te çi ye? Ewî mirovê dîtir got: 'Navê min filan e.' Ew navê ku ji ewran bihîstibû ew got. Vêca ewî mirovî (ku navê wî hate pirsîn) got: Ya 'ebdê Xwedê! Te ji bo çi navê min pirsî? Ewî got: Min, ji wî ewrê ku ev av ava wî ye, dengek bihîst wiha digot: Tu baxçê filan kesî, ku navê te bû, av bide. Ka tu bêje tu bi çi awayî bûyî xwedanê vê lutfê? Ewî got: Madem tu pirs dikî ez ji te re bêjim. Ez mehsûla baxçê xwe hisab dikim: Sêyeka wê ez sedeqe didim, sêyeka wê ez û zarokên xwe dixwin û sêyeka dîtir jî dihêlim ji tov/toxim re. *Muslim riwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهِي عَنِ الْبُخْلِ وَالشَّحِ
## KUNOJÎTÎ/BEXÎLÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَأَمَّا مَنْ بَخِلَ وَاسْتَغْنَى ۝ وَكَذَّبَ بِالْحُسْنَى ۝ فَسَنُيَسِّرُهُ لِلْعُسْرَى ۝ وَمَا يُغْنِي عَنْهُ مَالُهُ إِذَا تَرَدَّى﴾

"Her kesê kunojiyê bike û xwe dewlemend bizane û qenciyê mandel bike, emê wî ji tengiyê re muyesser bikin û wextê ew here helakê, mal û mulkê wî fayde nade wî."[1]

﴿وَمَنْ يُوقَ شُحَّ نَفْسِهِ فأُولَئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ﴾

"Kesê xwe ji bexîliyê biparêze ew rizgar bûyî ne."[2]

1 Leyl, 92/8-11.
2 Texabûn, 64/16.

٥٦٣- عَنْ جَابِرٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (اتَّقُوا الظُّلْمَ، فَإِنَّ الظُّلْمَ ظُلُمَاتٌ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، وَاتَّقُوا الشُّحَّ، فَإِنَّ الشُّحَّ أَهْلَكَ مَنْ كَانَ قَبْلَكُمْ، حَمَلَهُم عَلَى أَنْ سَفَكُوا دِمَاءَهُمْ، واسْتَحَلُّوا مَحَارِمَهُم). رَوَاهُ مُسْلِمْ.

563- Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn xwe ji sîtem û zordariyê biparêzin. Lewra sîtem di roja qiyametê de tarîtiy e û hûn xwe ji kunojîtiyê jî biparêzin. Lewra kunojîtiyê ew kesên beriya we helak kirine û bûye sedemê wê yekê ku wana xûna hevdu rijandin û meharimê hevdu jî ji xwe re helal kirin.” *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ الإِيثَار والْمُوَاسَاةِ

## TERCÎHKIRINA HEVALÎ LI SER XWE Û PARVEKIRINA MALÊ XWE BI XEYNÊ XWE RE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَيُؤْثِرُونَ عَلَى أَنْفُسِهِمْ وَلَوْ كَانَ بِهِمْ خَصَاصَةٌ﴾

“Ew (yên ji bilî xwe) tercihî xwe dikin, çendî ew hewcetir jî bin.”[1]

﴿وَيُطْعِمُونَ الطَّعَامَ عَلَى حُبِّهِ مِسْكِيناً وَيَتِيماً وَأَسِيراً﴾

“Digel dilçûyinê jî xwarinê didin feqîr û miskîn û êsîran.”[2]

٥٦٤- وَعَنْ أَبِي ﷺ هُرَيْرَةَ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فقَالَ: إِنِّي مَجْهُودٌ، فَأَرْسَلَ إِلَى بَعْضِ نِسَائِهِ، فَقَالَتْ: وَالَّذِي بَعَثَكَ بِالْحَقِّ مَا عِنْدِي إِلَّا مَاءٌ، ثُمَّ أَرْسَلَ إِلَى أُخْرَى، فَقَالَتْ مِثْلَ ذَلِكَ، حَتَّى قُلْنَ كُلُّهُنَّ مِثْلَ ذَلِكَ: لَا وَالَّذِي بَعَثَكَ بِالْحَقِّ مَا عِنْدِي إِلَّا مَاءٌ، فَقَالَ النَّبِيِّ ﷺ: (مَن يُضِيفُ هَذَا اللَّيْلَةَ؟) فَقَالَ رَجُلٌ مِنَ الأَنْصَارِ: أَنَا يَا رَسُولَ اللَّهِ، فَانْطَلَقَ بِهِ إِلَى رَحْلِهِ، فَقَالَ لِإِمْرَأَتِهِ: أَكْرِمِي ضَيْفَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ.

وفِي رِوَايَةٍ: قَالَ لِإِمْرَأَتِهِ: هَلْ عِنْدَكِ شَيْءٌ؟ قَالَتْ: لَا، إِلَّا قُوتَ صِبْيَانِي. قَالَ:

1 Heşr, 59/9.
2 Însan, 76/8.

  

فَعَلِّلِيهِنَّ بِشَيءٍ وَإِذَا أَرَادُوا الْعَشَاءَ فَنَوِّمِيهِمْ، وَإِذَا دَخَلَ ضَيْفُنَا، فَأَطْفِئِي السِّرَاجَ، وَأَرِيهِ أَنَّا نَأْكُل، فَقَعَدُوا وَأَكَلَ الضَّيْفُ وَبَاتَا طَاوِيَيْنِ، فَلَمَّا أَصْبَحَ غَدَا عَلَى النَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ: (لَقَدْ عَجِبَ اللهُ مِنْ صَنِيعِكُمَا بِضَيْفِكُمَا اللَّيْلَةَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

564- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Mirovek hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) jê re got: Ya Pêxemberê Xwedê, ji birçîna taqet li min nemaye. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) ji hinek ezwacê xwe re xeber şand. Ewan gotin: Bi sond, li cem min ji xeynê avê tu tiştek tune. Paşê wî (s.) şande bal yeka dîtir ve, ewê jî wekî wê got. Heta hemûyan wekî ya pêşiyê wiha gotin: Naxêr, sond bi wî Xwedayê ku tu bi heq şandî, li cem min ji xeynê avê tu tiştek tune. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (ji sehabiyan re) got: "Kiyê evî îşev bixe mêvanê xwe?" Ensariyekî got: Ez, ya Pêxemberê Xwedê. Vêca ewî ew mêvan hilda bire mala xwe û ji jina xwe re got: Qedrê mêvanê Pêxemberê Xwedê (s.) bigire.

Di rîwayeteke dîtir de: Ensarî ji jina xwe re got: Li cem te tiştekî xwarinê heye? Ewê got: Naxêr. Bes têra zarokên min heye. Wî got: Tu wan bi tiştekî bixapîne. Wextê ew bixwazin ku werine ser sifrê tu wan razîne. Wextê mêvan hate malê tu çirayê bitemirîne û wisa bide nîşan her wekî ku em jî digel wî xwarinê dixwin. Vêca ew rûniştin û mêvan xwarina xwe xwar. Ew her du (mêr û jinik) jî birçî razan. Wextê li wan bû sibeh ew hate cem Pêxemberê Xwedê (s.). Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bêguman Xweda te'ala pir 'ecêbmayî bû ji muamela we ya îşev bi mêvanê we re." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٦٥- وعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (طَعَامُ الاثْنَيْنِ كَافِي الثَّلاثَةِ، وطَعَامُ الثَّلاثَةِ كَافِي الأَرْبَعَةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ عَنْ جَابِرٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (طَعَامُ الوَاحِدِ يَكْفِي الاثْنَيْنِ، وَطَعَامُ الاثْنَيْنِ يَكْفِي الأَرْبَعَةَ، وَطَعَامُ الأَرْبَعَةِ يَكْفِي الثَّمَانِيَةَ)

565- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwarina du mirovan têra sê mirovan û xwarina sê mirovan jî têra çar mirovan dike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayeteke dîtir ya Muslim de: Ji Cabir (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwarina mirovekî têra diduyan, xwarina diduyan têra çaran û xwarina çaran jî têra heşt mirovan dike."

٥٦٦- وَعَنْ أَبِي سَعِيدِ الْخُدرِيِّ ﷺ قَالَ: بَيْنَمَا نَحْنُ فِي سَفَرٍ مَعَ النَّبِيِّ ﷺ إذ جَاءَ رَجُلٌ عَلَى رَاحِلَةٍ لَهُ، فَجَعَلَ يَصْرِفُ بَصَرَهُ يَمِيناً وَشِمَالاً، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ مَنْ كَانَ مَعَهُ فَضْلُ ظَهرٍ فَلْيَعُدْ بِهِ عَلَى مَنْ لَا ظَهْر لَهُ، وَمَنْ كَانَ لَهُ فَضل مِنْ زَادٍ، فَلْيَعُد بِهِ عَلَى مَن لَا زَادَ لَهُ) فَذَكَرَ مِنْ أَصْنَافِ الْمَالِ مَا ذَكَرَ حَتَّى رَأَينَا أَنَّهُ لَا حَقَّ لِأَحدٍ مِنَّا فِي فَضْلٍ). رَوَاهُ مُسْلِم.

566- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Rojekê em digel Pêxemberê Xwedê (s.) di rêwîtiyekê de bûn, mirovek li ser hêstira xwe siwar hat û çavê xwe aliyê rastê û yê çepê ve gerand. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Çi kesê merkeba wî zêde hebe bila wê bide wî yê ku merkeba wî tune. Çi kesê xwarina wî zêde hebe bila wê bide wî kesê ku xwarina wî tune." Behsa gelek ji enwa'ê malê kir, heta me zanî ku tu heqê me di malê zêde de tune. *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٦٧- وَعَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ ﷺ أَنَّ إِمْرَأَةً جَاءَتْ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ بِبُرْدَةٍ مَنْسُوجَةٍ، فقَالَتْ: نَسَجْتُهَا بِيَدَيَّ لأَكْسُوكَهَا، فَأَخَذَهَا النَّبِيُّ مُحْتَاجاً إِلَيْهَا، فَخَرَجَ إِلَيْنَا وَإِنَّهَا لإِزَارُهُ، فَقَالَ فُلَانٌ: اكسُنِيهَا مَا أَحْسَنَهَا فقَالَ: (نَعَمْ) فَجَلَسَ النَّبِيُّ ﷺ فِي الْمَجْلِسِ، ثُمَّ رَجَعَ فَطَوَاهَا، ثُمَّ أَرْسَلَ بِهَا إِلَيْهِ: فَقَالَ لَهُ الْقَوْمُ: مَا أَحسَنتَ لَبِسَهَا النَّبِيُّ مُحْتَاجاً إِلَيْهَا، ثُمَّ سَأَلْتَهُ، وَعَلِمتَ أَنَّهُ لَا يَرُدَّ سَائِلاً، فَقَالَ: إِنِّي وَاللَّهِ مَا سَأَلْتُهُ لأَلْبِسَهَا، إِنَّمَا سَأَلْتُهُ لِتَكُونَ كَفَنِي، قَالَ سَهْلٌ: فَكَانَتْ كَفَنَهُ). رَوَاهُ البُخَارِي.

567- Ji Sehlê kurê Se'd (r.) hatiye rîwayetkirin ku jinikek kurkekî bi destçêkirî anî hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û got: Min ev kurkê hanê bi destê xwe ji te re çêkir da ku tu li xwekî. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) ew girt û hewceyî wî bû jî. Pêxemberê Xwedê (s.) hate cem me û ew kurk jî ji xwe re xistibû pêşmalk. Vêca mirovekî gotin: Eva çiqas tiştekî rind e! Tu nadî min? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Belê." Pêxemberê Xwedê (s.) di meclisê de rûnişt, piştre jî zivirî çû malê, ew kurk pêça û ji wî mirovî re şand. Vêca milet ji wî mirovî re gotin: Te qet tiştekî baş nekir. Pêxemberê Xwedê (s.) ew kurka vegirtibû û hewceyî wî bû jî. Paşê jî te rabû ew kurk jê xwest û te dizanîbû jî ku ew tu xwestokerî paşve nazvirîne. Vêca ewî

  

mirovî got: Bi sond, min ji bo vegirtinê jê nexwest, bes min ew xwest ku ji bo bibe kefenê min. Sehl got: Ew kurk bû kefenê wî. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٦٨- وَعَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ الأَشْعَرِيِّينَ إِذَا أَرْمَلُوا فِي الْغَزْوِ، أَوْ قَلَّ طَعَامَ عِيَالِهِمْ بَالمَدِينَةِ، جَمَعُوا مَا كَانَ عِنْدَهُمْ فِي ثَوْبٍ وَاحِدٍ، ثُمَّ اقْتَسَمُوهُ بَيْنَهُمْ فِي إِنَاءٍ وَاحِدٍ بَالسَّوِيَّةِ فَهُم مِنِّي وَأَنَا مِنْهُم). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

568- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman êla Eş'eriyan wextê di herbê de xwarina wan ber xelasbûne dibû yan jî xwarina zarokê wan di Medineyê de kêm dibû, heçî xwarina li cem wan heyî li ser cilekî kom dikirin paşê di navbera xwe de bi yek firaxekî wekî hevdu parve dikirin. Vêca ew ji min in û ez jî ji wan im." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ التَّنَافُسِ فِي أُمُورِ الآخِرَةِ

## LEZKIRINA DI KARÊ DE AXIRETÊ Û DAXWAZA KIRINA TIŞTÊ QENC

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَفِي ذَٰلِكَ فَلْيَتَنَافَسِ الْمُتَنَافِسُونَ﴾

"Bila di vê de (tiştên ku dibin sedemê razîbûna Xwedê) pêşbazîker pêşbaziyê bikin"[1]

٥٦٩- وَعَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ أُتِيَ بِشَرَابٍ، فَشَرِبَ مِنْهُ، وَعَنْ يَمِينِهِ غُلَامٌ، وَعَنْ يَسَارِهِ الأَشْيَاخُ، فقَالَ لِلْغُلام: (أَتَأْذَنُ لِي أَن أُعْطِيَ هؤُلَاءِ؟) فَقَالَ الغُلامُ: لَا وَاللَّهِ يَا رَسُولَ الله لَا أُوثِرُ بِنَصِيبِي مِنْكَ أَحَداً، فَتَلَّهُ رَسُولُ الله ﷺ فِي يَدِهِ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

569- Ji Sehlê kurê Se'd (r.) hatiye rîwayetkirin ku ji Pêxemberê Xwedê (s.) re tiştekî vexwarinê hatibû. Vêca ewî (s.) hinek jê vexwar û li aliyê wî yê rastê piçûkek ('Ebdullahê kurê 'Ebbas) hebû û aliyê wî yê çepê jî hinek mirovên pîr hebûn. Ewî (s.) ji piçûkî re got: 'Tu îzna min didî ku ez evê

1 Muteffifîn, 83/26.

bidime evan mirovên pîr? Ewî got: Bi sond naxêr ya Resûlê Xwedê, ez para xwe ya ku ji te hatiye nabexşînime tu kesî. Li ser vê gotinê Pêxemberê Xwedê (s.) ew vexwarin da destê wî piçûkî. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٧٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (بَيْنَمَا أَيُّوبُ ﷺ يَغْتَسِلُ عُرْيَاناً، فَخَرَّ عَلَيْهِ جَرَادٌ مِنْ ذَهَبٍ، فَجَعَلَ أَيُّوبُ يَحْثِي فِي ثَوْبِهِ، فَنَادَاهُ رَبُّهُ عَزَّ وَجَلَّ: يَا أَيُّوبُ، أَلَمْ أَكُنْ أَغْنَيْتُكَ عَمَّا تَرَى؟ قَالَ: بَلَى وَعِزَّتِكَ، وَلكِنْ لَا غِنَى بِي عَنْ بَرَكَتِكَ). رَوَاهُ البُخَارِي.

570- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Eyyûb Pêxember (s.) wextê xwe bi tazî şûşt komek kuliyên zêr hatin ketin ber destê wî. Vêca ewî (s.) cilê xwe tijî kir. Li ser vê yekê Xwedê te'ala gazî wî kir û got: "Ey Eyyûb, qey min tu dewlemend nekirî ji tiştê ku tu dibînî?" Ewî (s.) got: "Belê rast e. Lêbelê, bi sond, ez tu car ji bereketa te dewlemend nabim." *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ الْغَنِيِّ الشَّاكِرِ

## DEWLEMENDÊN ŞIKURDAR

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿فَأَمَّا مَنْ أَعْطَى وَاتَّقَى ۞ وَصَدَّقَ بِالْحُسْنَى ۞ فَسَنُيَسِّرُهُ لِلْيُسْرَى﴾

"Kesê ku malê xwe di rêya Xwedê de mezaxt û paşê xwe parast û bawerî bi gotina rind (ku kelîmeya tewhîdê ye) anî emê jî rêya wî ji bo kar û kiryarê baş xweş bikin."[1]

(وَسَيُجَنَّبُهَا الأَتْقَى ۞ الَّذِى يُؤْتِى مَالَهُ يَتَزَكَّى ۞ وَمَا لِأَحَدٍ عِنْدَهُ مِنْ نِعْمَةٍ تُجْزَى ۞ إِلَّا ابْتِغَاءَ وَجْهِ رَبِّهِ الأَعْلَى ۞ وَلَسَوْفَ يَرْضَى)

"Ew kesê xwe ji tiştê nebaş parastî ye; ewê ku ne ji bo minnetê kesî ku li ser heye evî ber bixe, bes bi tenê ji bo daxwaza razîbûna Xwedê malê xwe dimezixe ku nefsa xwe pê paqij bike, emê jî ewî kesî ji êgir dûr bigrin û ewê hê razîbûnê bibîne."[2]

1 Leyl, 92/5-7.
2 Leyl, 92/17-21.

﴿إِنْ تُبْدُوا الصَّدَقَاتِ فَنِعِمَّا هِيَ وَإِنْ تُخْفُوهَا وتُؤْتُوهَا الْفُقَرَاءَ فَهُوَ خَيْرٌ لَكُمْ وَيُكَفِّرُ عَنْكُمْ مِنْ سَيِّئَاتِكُمْ وَاللهُ بِمَا تَعْمَلُونَ خَبِيرٌ﴾

"Heger hûn xêr û sedeqa eşkere bikin ewa xweş kar e, eger hûn ewan bi veşartî bikin û bidin jar û xizana hê xêrtir û çêtir e ji bo we. Û Xwedê dê ewan bike kefaret ji bo gunehên we. Xiwedê te'ala bi kar û kiryarê we şareza ye."[1]

(لَنْ تَنَالُوا الْبِرَّ حَتَّى تُنْفِقُوا مِمَّا تُحِبُّونَ وَمَا تُنْفِقُوا مِنْ شَيْءٍ فَإِنَّ اللَّهَ بِهِ عَلِيمٌ)

"Bi rastî hûn nagihêjine rastiya qenciyê heta hûn tiştê ku hûn gelek hez jê dikin (di rêya Xwedê de) nemezixînin. Çi tiştê ku hûn bimezixînin Xwedê pê dizane."[2]

٥٧١- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا حَسَدَ إِلَّا فِي اِثْنَتَيْنِ: رَجُلٌ آتَاهُ اللَّهُ مَالاً، فَسَلَّطَهُ عَلَى هَلَكَتِهِ فِي الْحَقِّ، وَرَجُلٌ آتَاهُ اللَّهُ حِكْمَةً فَهُو يَقْضِي بِهَا ويُعَلِّمُهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

571- Ji 'Ebdullahê kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bes di du tiştan de çavreşî/dexesî dirust e: Merivê ku Xwedê te'ala mal dabiyê, ew jî wî malî di rêya heqiyê de dimezixîne û yek jî ew merivê ku Xwedê hîkmet û zanîn kiribe para wî û vêca ew jî bi wê daraz/hukim dide û ewê hînî însanan dike." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٥٧٢- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَا حَسَدَ إِلَّا فِي اِثْنَتَيْنِ: رَجُلٌ آتَاهُ اللَّهُ القُرْآنَ، فهُوَ يَقُومُ بِهِ آنَاءَ اللَّيْلِ وآنَاءَ النَّهَارِ، وَرَجُلٌ آتَاهُ اللَّهُ مَالاً، فَهُوَ يُنْفِقُهُ آنَاءَ اللَّيْلِ وَآنَاءَ النَّهَارِ) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

572-Ji Îbnu 'Umer (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bes di du tiştan de dexesî baş e. Ew mirovê ku Xwedê Qur'an dayê û ew jî bi şev û bi roj dixwîne û pê 'emel dike. Yek jî ew mirovê ku Xwedê te'ala malekî dayê û ew jî bi şev û bi roj di rêya wî de serf dike." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

1 Beqere, 2/271.
2 Alî 'Îmran, 3/92.

٥٧٣- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ فُقَرَاءَ الْمُهَاجِرِينَ أَتَوْا رَسُولَ اللَّهِ ﷺ، فَقَالُوا: ذَهَبَ أَهْلُ الدُّثُورِ بِالدَّرَجَاتِ الْعُلَى، والنَّعِيمِ الْمُقِيمِ، فَقَالَ: (وَمَا ذَاكَ؟) فَقَالُوا: يُصَلُّونَ كَمَا نُصَلِّي، ويَصُومُونَ كَمَا نَصُومُ، وَيَتَصَدَّقُونَ وَلَا نَتَصَدَّقُ، وَيَعْتِقُونَ وَلَا نَعْتِقُ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَفَلَا أُعَلِّمُكُمْ شَيْئاً تُدْرِكُونَ بِهِ مَنْ سَبَقَكُمْ، وَتَسْبِقُونَ بِهِ مَنْ بَعْدَكُمْ، وَلَا يَكُونُ أَحَدٌ أَفْضَلُ مِنكُمْ إِلَّا مَنْ صَنَعَ مِثْلَ مَا صَنَعْتُمْ؟) قَالُوا: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: (تُسَبِّحُونَ، وَتَحْمدونَ وَتكَبِّرُونَ دُبُرَ كُلِّ صَلَاةٍ ثَلَاثاً وَثَلَاثِينَ مَرَّةً) فرَجَعَ فُقَرَاءُ الْمُهَاجِرِينَ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ، فَقَالُوا: سَمِعَ إِخْوَانُنَا أَهْلُ الأَمْوَالِ بِمَا فَعَلْنَا، فَفَعَلُوا مِثْلَهُ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (ذَلِكَ فَضْلُ اللَّهِ يُؤْتِيهِ مَنْ يَشَاءُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

573- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku belengazê Muhaciran hatin bal Pêxemberê Xwedê (s.) û gotin: Maldar gihîştine dereceyên bilind û nîmetên bêdawî. Resûlê Xwedê (s.) got: “Ewan çi kirine?” Ewan gotin: Wekî me nimêj dikin û wekî me rojî digrin. Ew sedeqeyê didin, lêbelê em nikarin sedeqeyê bidin û ew koleyan azad dikin û em nikarin azad bikin. Vêca ewî (s.) got: “Ez tiştekî hînî we bikim ku hûn bi wê bigihêjine wan kesên beriya we û ji yê piştî xwe jî derbas bibin û tu kes ji we derbas nabe, ancax ewê ku wekî kirina we bikin. Ewan gotin: Belê, Ya Resûlê Xwedê! Ewî (s.) got: “Hûn piştî her nimêjê sî û sê caran Subhanellah, sî û sê caran *elhemdu lillah* û sî û sê caran jî *ellahu ekber* bêjin.” Li ser vê yekê belengazê Muhaciran dîsa zivirîn û hatin bal Pêxemberê Xwedê (s.) û gotin: Birayê me yên maldar jî evan kirinên me bihîstin û ew jî wekî wê kirina me dikin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Ew fezl û kerema Xwedê ye û dide wî kesê ku divê.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ ذِكْرِ الْمَوْتِ وَقِصَرِ الأَمَلِ

## BÎRANÎNA MIRINÊ Û KURTKIRINA EMEL/HÊVÎDARIYÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿كُلُّ نَفْسٍ ذَائِقَةُ الْمَوْتِ وَإِنَّمَا تُوَفَّوْنَ أُجُورَكُمْ يَوْمَ الْقِيَامَةِ فَمَنْ زُحْزِحَ عَنِ النَّارِ

  

وَأُدْخِلَ الْجَنَّةَ فَقَدْ فَازَ وَمَا الْحَيَاةُ الدُّنْيَا إِلَّا مَتَاعُ الْغُرُورِ﴾

"Her candarê wê mirinê tam bike (yê şerbeta mirinê vexwe). Bi rastî roja qiyametê hûn hemû dê mukafatê xwe wergirin. Vêca kesê ku ji êgir were dûrkirin û were daxilkirin di cennetê de bêguman ew rizgar bû. Jîna dunyayê ji xeml û pertalê xapandinê pêvetir nîne."[1]

﴿وَمَا تَدْرِي نَفْسٌ مَاذَا تَكْسِبُ غَداً وَمَا تَدْرِي نَفْسٌ بِأَيِّ أَرْضٍ تَمُوتُ﴾

"Tu kes nizane ka sibehî wê çi bike û tu kes nizane ka li kuderê wê bimire."[2]

﴿فَإِذَا جَاءَ أَجَلُهُمْ لَا يَسْتَأْخِرُونَ سَاعَةً وَلَا يَسْتَقْدِمُونَ﴾

"Vêca eger wextê ewan hat, êdî ne sa'etekî li paş û ne jî li pêş dikevin."[3]

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا لَا تُلْهِكُمْ أَمْوَالُكُمْ وَلَا أَوْلَادُكُمْ عَنْ ذِكْرِ اللَّهِ وَمَنْ يَفْعَلْ ذَلِكَ فَأُولَئِكَ هُمُ الْخَاسِرُونَ ۞ وَأَنْفِقُوا مِمَّا رَزَقْنَاكُمْ مِنْ قَبْلِ أَنْ يَأْتِيَ أَحَدَكُمُ الْمَوْتُ فَيَقُولَ رَبِّ لَوْلَا أَخَّرْتَنِي إِلَى أَجَلٍ قَرِيبٍ فَأَصَّدَّقَ وَأَكُنْ مِنَ الصَّالِحِينَ ۞ وَلَنْ يُؤَخِّرَ اللهُ نَفْساً إِذَا جَاءَ أَجَلُهَا وَاللهُ خَبِيرٌ بِمَا تَعْمَلُونَ﴾

"Gelî ewên bawerî anîne! Bila mal û zarokên we, we ji bîranîna Xwedê mijûl nekin. Ew kesê evê yekê bike, her ew in yê dixusirin. Ji rizqê me yê ku me daye we bimezêxin beriya mirina yekî ji we be û bêje: Xwedê, xwezî te mirina min biçekî bi paş bixista, dê min xêr bikirina û ez bibûyama ji qencîkaran. Xwedê mirina tu kesî, eger wextê mirina wî hat, tu car bi paş naxe. Hûn çi bikin Xwedê pê agahdar e."[4]

(حَتَّى إِذَا جَاءَ أَحَدَهُمُ الْمَوْتُ قَالَ رَبِّ ارْجِعُونِ ۞ لَعَلِّي أَعْمَلُ صَالِحاً فِيمَا تَرَكْتُ كَلَّا إِنَّهَا كَلِمَةٌ هُوَ قَائِلُهَا وَمِنْ وَرَائِهِمْ بَرْزَخٌ إِلَى يَوْمِ يُبْعَثُونَ ۞ فَإِذَا نُفِخَ فِي الصُّورِ فَلَا أَنْسَابَ بَيْنَهُمْ يَوْمَئِذٍ وَلَا يَتَسَاءَلُونَ ۞ فَمَنْ ثَقُلَتْ مَوَازِينُهُ فَأُولَئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ ۞ وَمَنْ خَفَّتْ مَوَازِينُهُ فَأُولَئِكَ الَّذِينَ خَسِرُوا أَنْفُسَهُمْ فِي جَهَنَّمَ خَالِدُونَ ۞ تَلْفَحُ

1 Alî 'Îmran, 3/185.
2 Loqman, 31/34.
3 Nehl, 16/61.
4 Munafiqûn, 63/9-11.

وُجُوهَهُمُ النَّارُ وَهُمْ فِيهَا كَالِحُونَ ۞ أَلَمْ تَكُنْ آيَاتِي تُتْلَى عَلَيْكُمْ فَكُنْتُمْ بِهَا تُكَذِّبُونَ ۞ إِلَى قَوْلِهِ تَعَالَى: ﴿كَمْ لَبِثْتُمْ فِي الأَرْضِ عَدَدَ سِنِينَ ۞ قَالُوا لَبِثْنَا يَوْماً أَوْ بَعْضَ يَوْمٍ فَاسْأَلِ العَادّينَ ۞ قَالَ إِنْ لَبِثْتُمْ إِلَّا قَلِيلاً لَوْ أَنَّكُمْ كُنْتُمْ تَعْلَمُونَ ۞ أَفَحَسِبْتُمْ أَنَّمَا خَلَقْنَاكُمْ عَبَثاً وَأَنَّكُمْ إِلَيْنَا لَا تُرْجَعُونَ﴾

*"Heta wextê mirina yekî ji wan tê, dibêje: Xwedê, min bizvirîne (dunyayê) da ez kiryarê qenc, ewê ku min hêlaye, bikim. Naxêr, ew gotinek e, ew ewê gotinên xwe bi xwe dibêje. Pêşiya ewan de navberek (berzex û gor) heye heta roja ku bên berhevkirin (nahêle ew bizvirine dunyayê). Heger pif li sûrê hate dan, hingî mirovatî di navbera ewan de namîne û kes jî pirsiyara kesî nake (her kes bi xwe ve mijûl e). Vêca ew kesê şehîna wan bi kar û kiryarê qenc giran be, ew in yên her rizgar. Û ew kesê şehîna wan bi kar û kiryarê qenc sivik be, ew in yê ku xwe xesirandine û ew di cehennemê de bidom dimînin. Agir rûyê wan dişewitîne û ew di cehennemê de rûreş in û çavhêşîn in û ji ewan re tê gotin: Qey ayetên min ji we re nedihate xwendin û ya rastî we jî bawerî bi wan nedianîn. Ewan got: Xwedê, xerabiya me serî ji me stand û em mileteki rêşaş bûn. Xwedê, tu me ji êgir derbixe. Vêca eger em dîsa zivirîne xerabiyê hingî em sîtemkar in. Xwedê got: Hûn rezîl û riswa tê de bimînin û bi min re jî neaxivin. Bi rastî desteyeke ji bendeyên min wiha digotin: Xwedê, me bawerî anîbû, vêca tu me bibexşîne û dilovaniyê bi me bike. Tu herî çêtirê dilovana yî. Vêca we, ew bendeyên min kiribûn pêtirane. Heta tiranekirina we bi wan, ez ji bîra we birim û di dunyayê de hûn bi wan dikeniyan. Bi rastî min îro ew bi sedem sebra ku kişandin ew xelatkirin û bi rastî her ew in yên rizgar. Xwedê got: Hûn çend salan di dunyayê de mane. Ewan gotin: Em rojekê an jî danekê rojê man, ka tu ji hesabdaran bipirse. Xwedê got: (Rast e) eger hûn bizanibin hûn ji wextekî kêm pêkvetir nemane. Hûn dibêjin qey me hûn beyhude afirandine û hûn nazvirine bal me ve."*[1]

﴿أَلَمْ يَأْنِ لِلَّذِينَ آمَنُوا أَنْ تَخْشَعَ قُلُوبُهُمْ لِذِكْرِ اللَّهِ وَمَا نَزَلَ مِنَ الْحَقِّ وَلَا يَكُونُوا كَالَّذِينَ أُوتُوا الْكِتَابَ مِنْ قَبْلُ فَطَالَ عَلَيْهِمُ الأَمَدُ فَقَسَتْ قُلُوبُهُمْ وَكَثِيرٌ مِنْهُمْ فَاسِقُونَ﴾.

"Qey wext nehatiye ku dilê bawermendan bi bîranîna Xwedê û Qur'anê bitirse. Bila ew nebin wekî ew kesê ku di berê de ji wan re kitêb hatibûn û

1 Mumînûn, 23/99-115.

  

piştî sal û wext di ser wan re derbas bûn dilê wan req bû û desteyeke pir ji wan ji rêya rast derketin”[1]

٥٧٤- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: أَخَذَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِمَنْكِبَيَّ فَقَالَ: (كُنْ فِي الدُّنْيَا كَأَنَّكَ غَرِيبٌ أَوْ عَابِرُ سَبِيلٍ).

وَكَانَ ابْنُ عُمَرَ ﷺ يَقُولُ: إِذَا أَمْسَيتَ، فَلَا تَنْتَظِرِ الصَّبَاحَ، وَإِذَا أَصْبَحْتَ، فَلَا تَنْتَظِرِ الْمَسَاءَ، وَخُذْ مِنْ صِحَّتِكَ لِمَرَضِكَ، ومِنْ حَيَاتِكَ لِمَوْتِكَ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

574- Ji Îbnu ‘Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) bi milê min girt û got: “Tu di dunyayê de bibe her wekî ku tu xerîb î an jî rêwî ye.” Îbnu ‘Umer (r.) digot: (Ey misilman) wextê li te bû êvar, tu li hêviya sibê nemîne û wextê li te bû sibeh tu hêviya êvarê nemîne. Tu miqatê tendirustiya (siheta) xwe be berî nexweşiya xwe û tu li jîna xwe miqate be beriya mirina xwe.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٧٥- وَعَنْهُ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (مَا حَقُّ امْرِئٍ مُسْلِمٍ لَهُ شَيْءٌ يُوصِي فِيهِ، يَبِيتُ لَيْلَتَيْنِ إِلَّا وَوَصِيَّتُهُ مَكْتُوبَةٌ عِنْدَهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ (يَبِيتُ ثَلَاثَ لَيَالٍ) قَالَ ابْنُ عُمَرَ: مَا مَرَّتْ عَلَيَّ لَيْلَةٌ مُنْذُ سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ ذَلِكَ إِلَّا وَعِنْدِي وَصِيَّتِي.

575- Dîsa ji wî hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Heqê mirovê xweyê tiştekî ku bikare bike wesiyet nîne ku du şeva bimîne û wesiyeta wî li cem nenivîsandî be.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayeteke dîtir de: Sê şeva bimîne. *Muslim rîwayet kiriye.*

Îbnu ‘Umer (r.) got: Di ser min re şevek derbas nebûye ji wextê min ev gotin ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst pêve, miheqqeq wesiyeta min li cem min bûye.”

٥٧٦- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: خَطَّ النَّبِيُّ ﷺ خُطُوطاً، فَقَالَ: هَذَا الإِنْسَانُ، وَهَذَا أَجَلُهُ، فَبَيْنَمَا هُوَ كَذَلِكَ إِذْ جَاءَ الخَطُّ الأَقْرَبُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

576- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) hinek xîzik kişand û got:

1 Hedîd, 57/16.

  

"Ev xîz însan e û ev jî ecelê wî ye. Wextê ew di vî halî de ye xîza nêzîktir tê cem." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٧٧- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: خَطَّ النَّبِيُّ ﷺ خَطّاً مُرَبَّعاً، وَخَطَّ خَطًّا فِي الْوَسَطِ خَارِجاً مِنْهُ، وَخَطَّ خُطَطاً صِغَاراً إِلَى هَذَا الَّذِي فِي الْوَسَطِ مِنْ جَانِبِهِ الَّذِي فِي الْوَسَطِ، فَقَالَ: (هَذَا الإِنْسَانُ، وَهَذَا أَجَلُهُ مُحِيطٌ بِهِ - أَوْ قَدْ أَحَاطَ بِهِ - وَهَذَا الَّذِي هُوَ خَارِجٌ أَمَلُهُ، وَهَذِهِ الخُطَطُ الصِّغَارُ الأَعْرَاضُ، فَإِنْ أَخْطَأَهُ هَذَا نَهَشَهُ هَذَا، وإِنْ أَخْطَأَهُ هَذَا نَهَشَهُ هَذَا). رَوَاهُ البُخَارِي.

577- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) xîzikek çargoşe kişand û naverasta wê de jî xîzikeka jê derketî kişand û hinek xîzikên piçûk jî bal vê xîza naverast û aliyê wê yê navçe de kişand û got: "Ev xîz însan e û ev jî ecelê wî ye ku ew dorpêçkiriye û ev xîza derve jî hêviyên wî ne û ev xîzên piçûk jî tiştê nû peyda bûne. Heger yek ji van wî 'aciz neke û jê derbas bibe ya din dê ewî 'aciz bike û eger eva jî jê derbas bibe ya din dê ewî 'aciz bike." *Buxarî rîwayet kiriye.*

Ev şekl resmê vê ye:

٥٧٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللهِ ﷺ قَالَ: (بَادِرُوا بِالأَعْمَالِ سَبْعاً: هَل تَنْتَظِرُونَ إِلَّا فَقْراً مُنْسِياً؟ أَوْ غِنىً مُطْغِياً، أَوْ مَرَضاً مُفْسِداً، أَوْ هَرَماً مُفَنِّداً، أَوْ مَوْتاً مُجْهِزاً، أَوِ الدَّجَّالَ، فَشَرُّ غَائِبٍ يُنْتَظَرُ، أَوِ السَّاعَةَ وَالسَّاعَةُ أَدْهَى وَأَمَرُّ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

578- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Hûn di kirina heft kar û kiryaran de lez bikin: Ma gelo hûn li hêviya ewê xizaniya ku mirov dide jibîrkirin, yan dewlemendiya ku mirov ji rê derdixe, yan nexweşiya ku laşê însan xerab dike, yan pîrbûna ku mirov bê hiş dike, yan mirina ku bi lez însan digire û dibe, yan Deccalê ku xerabtirîn şerrê dahatûyê ye, yan jî hûn li hêviya qiyametê ne ku qiyamet jî dilêştir û tehltir e." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

٥٧٩- وعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللّهِ ﷺ: (أَكْثِرُوا ذِكْرَ هَادِمِ اللَّذَّاتِ) يَعْنِي الْمَوْتَ. رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

579-Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn mirina ku tama tiştê xirab dike pir bînin bîra xwe.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

٥٨٠- وَعَنْ أُبَيِّ بْنِ كَعْبٍ ﷺ كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا ذَهَبَ ثُلُثُ اللَّيْلِ قَامَ فَقَالَ: (يَا أَيُّهَا النَّاسُ اذْكُرُوا اللَّهَ، جَاءَتِ الرَّاجِفَةُ، تَتْبَعُهَا الرَّادِفَةُ، جَاءَ الْمَوْتُ بِمَا فِيهِ، جَاءَ الْمَوْتُ بِمَا فِيهِ) قُلْتُ: يَا رَسُولَ الله إِنِّي أُكْثِرُ الصَّلَاةَ عَلَيْكَ، فَكَمْ أَجْعَلُ لكَ مِنْ صَلَاتِي؟ قَالَ: (مَا شِئْتَ) قُلْتُ: الرُّبع؟ قَالَ:(مَا شِئْتَ، فَإِنْ زِدْتَ فَهُوَ خَيْرٌ لَكَ) قُلْتُ: فَالنِّصْفَ؟ قَالَ: (مَا شِئْتَ، فَإِنْ زِدْتَ فَهُوَ خَيْرٌ لَكَ) قُلْتُ: فَالثُّلُثَيْنِ؟ قَالَ: (مَا شِئْتَ فَإِنْ زِدْتَ فَهُوَ خَيْرٌ لَكَ) قُلْتُ: أَجْعَلُ لَكَ صَلَاتِي كُلَّهَا، قَالَ: (إِذاً تُكْفَى هَمَّكَ، ويُغْفَرَ لَكَ ذَنْبُكَ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

580- Ji Ubeyyê kurê Ke‘b (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) piştî sêyeka şevê rabû û got: “Mirovno, hûn Xwedê te‘ala bi bîr bînin. Hejîneka zahf bi hêz wê were û piştre jî yek dîtir li pey tê. Mirin bi hemû şiddeta xwe tê, mirin bi hemû şiddeta xwe tê.” Rawî dibêje: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê, ez gelek selata li ser te didim. Vêca ez ji evan çiqasî ji bo te bikim? Ewî (s.) got: “Te çiqas bivê.” Min got: Çaryek. Ewî (s.) got: “Te çiqas bivê, lêbelê tu zêde bikî ji bo te çêtire.” Min got: Nêvî? Ewî (s.) got: “Te çiqas bivê, lêbelê eger tu zêde bikî ji bo te çêtire.” Min got: Du sêyek? Ewî (s.) got: “Te çiqas bivê, lêbelê eger tu zêde bikî ji bo te çêtire.” Min got: Ezê selata xwe hemû bibexşînime te? Ewî (s.) got: Ewî çaxî Xwedê kafiyê hemû karê te yê dunyayê û yê axîretê ye û yê gunehê te jî bibexşîne.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

## بَابُ إِسْتِحْبَاب زِيَارَةُ الْقُبُورِ للرجَالِ
## ZIYARETKIRINA GORISTANÊ

٥٨١- عَنْ بُرَيْدَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (كُنْتُ نَهَيْتكُمْ عَنْ زِيَارَةِ القُبُورِ فَزُورُوهَا). رَوَاهُ مُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: (فَمَنْ أَرَادَ أَنْ يَزُورَ الْقُبُورَ فَلْيَزُرْ)

581- Ji Bureyde (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Min hûn ji ziyaretkirina gora men‘kiribû, lêbelê ji vir û pêde ziyaret bikin.” *Muslim rîwayet kiriye.*

Di rîwayeteke dîtir de: “Kesê bixwaze bila here ziyareta tirban.”

٥٨٢- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ كُلَّمَا كَانَ لَيْلَتَهَا مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ يَخْرُجُ مِنْ آخِرِ اللَّيْلِ إِلَى الْبَقِيعِ فَيَقُولُ: (السَّلامُ عَلَيْكُمْ دَارَ قَوْمٍ مُؤْمِنِينَ، وَأَتَاكُمْ مَا تُوعَدُونَ، غَداً مُؤَجَّلُونَ، وَإِنَّا إِنْ شَاءَ الله بِكُمْ لَاحِقُونَ، اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِأَهْلِ بَقِيعِ الْغَرْقَدِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

582- Ji ‘Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) çiqas bibiya şeva dora wê, di dawiya şevê de diçû ziyareta goristanê û digot: “Gelî ehlê mala mu’minan! Silavê Xwedê li ser we bin, ji bo sibehê tiştê paş ve hatiye we‘de kirin ji bo we, ji we re hat. Bêguman, bi hezkirina Xwedê emê jî piştî we werin. Xwedê, tu ehlê goristana Xerqedê bibexşînî.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٨٣- وَعَنْ بُرَيْدَةَ ﷺ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يُعَلِّمُهُمْ إِذَا خَرَجُوا إِلَى الْمَقَابِرِ أَنْ يَقُولَ قَائِلُهُمْ: (السَّلَامُ عَلَيْكُمْ أَهْلَ الدِّيَارِ مِنَ الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُسْلِمِينَ، وَإِنَّا إِنْ شَاءَ الله بِكُمْ لَاحِقُونَ، أَسْأَلُ الله لَنَا وَلَكُمُ الْعَافِيَةَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

583- Ji Bureyde (r.), got: Wextê misilman ji bo ziyaretkirina goristanê derdiketin Pêxemberê Xwedê (s.) bi wan dida zanîn ku wiha bêjin: Silav li ser we be ey xwedanê diyarê mu’minan û misilmanan, bêguman bi hezkirina Xwedê te‘ala emê jî piştî we werin cem we. Ez ji Xwedê te‘ala bexşandinê ji me û ji we re dixwazim.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٨٤- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: مَرَّ رَسُولُ الله ﷺ بِقُبُورِ الْمَدِينَةِ فَأَقْبَلَ عَلَيْهِمْ بِوَجْهِهِ فَقَالَ: (السَّلَامُ عَلَيْكُمْ يَا أَهْلَ الْقُبُورِ، يَغْفِرُ الله لَنَا وَلَكُمْ أَنْتُمْ سَلَفُنَا وَنَحْنُ بِالأَثَرِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي.

584- Ji kurê ‘Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) li ber goristana Medîneyê re derbas bû, berê xwe zîvirand bi bal wan ve û got: “Silav li ser we be ey ehlê goristanê, Xwedê te‘ala me û we bibexşîne. Hûn selefên me ne (yên beriya me ne) û em jî li pey we tên.” *Tirmizî rîwayet kiriye.*

  

## بَابُ كَرَاهَةِ تَمَنِّي الْمَوْتِ
## DAXWAZIYA MIRINÊ

٥٨٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللهِ ﷺ (قَالَ: لَا يَتَمَنَّ أَحَدُكُمُ الْمَوْتَ إِمَّا مُحْسِناً، فَلَعَلَّهُ يَزْدَادُ، وَإِمَّا مُسِيئاً فَلَعَلَّهُ يَسْتَعْتِبُ) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا يَتَمَنَّ أَحَدُكُمُ الْمَوتَ، وَلَا يَدْعُ بِهِ مِنْ قَبْلِ أَنْ يَأْتِيَهُ، إِنَّهُ إِذَا مَاتَ انْقَطَعَ عَمَلُهُ، وَإِنَّهُ لَا يَزِيدُ الْمُؤْمِنَ عُمُرُهُ إِلَّا خَيْراً)

585- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bila tu kes ji we daxwaziya mirinê neke. Heger ew mirov qenc be hêvî heye ku ew qenctir bibe û eger ew xerab be hêvî heye ku ew tobe bike û vegere." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayeteka Muslim de: Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bila tu kes ji we daxwaziya mirinê neke. Hîna mirina wî nehatiye bila ew dua neke ji bo mirinê. Lewra wextê bimire kar û kiryarê wî tê birîn û bêguman mirovê mumin umrê wî ancax başiya wî zêde dike."

٥٨٦- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا يَتَمَنَّيَنَّ أَحَدُكُمُ الْمَوْتَ لِضُرٍّ أَصَابَهُ، فَإِنْ كَانَ لَا بُدَّ فَاعِلاً، فَلْيَقُلْ: اللَّهُمَّ أَحْيِنِي مَا كَانَتِ الْحَيَاةُ خَيْراً لِي، وَتَوَفَّنِي إِذَا كَانَتِ الْوَفَاةُ خَيْراً لِي) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

586- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bila tu kes ji we sedem nexweşiyeke lê peyda bûye daxwaza mirinê neke. Heger pêwist bike ku daxwaza mirinê bike, bila ew bibêje: Xwedê, eger jiyana min ji min re çêtir be tu min sax bihêlî û eger mirin ji bo min çêtir be tu min bimirînî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٨٧- وَعَنْ قَيْسِ بْنِ أَبِي حَازِمٍ ﷺ قَالَ: دَخَلْنَا عَلَى خَبَّابِ بْنِ الأَرَتِّ ﷺ نَعُودُهُ وَقَدِ اكْتَوَى سَبْعَ كَيَّاتٍ فَقَالَ: إِنَّ أَصْحَابَنَا الَّذِينَ سَلَفُوا مَضَوْا، وَلَمْ تَنْقُصْهُمُ الدُّنْيا، وإِنَّا أَصَبْنَا

مَا لَا نَجِدُ لَهُ مَوْضِعاً إِلَّا التُّرَاب، وَلَوْلَا أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ نَهَانَا أَنْ نَدْعُوَ بِالْمَوْتِ لَدَعَوْتُ بِهِ، ثُمَّ أَتَيْنَاهُ مَرَّةً أُخْرَى وَهُوَ يَبْنِي حَائِطاً لَهُ، فَقَالَ: إِنَّ الْمُسْلِمَ لَيُؤْجَرُ فِي كُلِّ شَيْءٍ يُنْفِقُهُ إِلَّا فِي شَيْءٍ يَجْعَلُهُ فِي هَذَا التُّرَاب. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم، وَهَذَا لَفْظُ الْبُخَارِي.

587- Ji Qêysê kurê Ebû Hazim (r.), got: Em çûne bal Xebbabê kurê Eret (r.) û me serek lê da. Ew ji heft ciyê laşê xwe hatibû dax kirin û ewî got: Hevalê me yê berê çûn û dunyayê jî ji ecr û xêrên wan tiştek kêm nekir. Me jî ewqas malê dunyayê bi dest xistiye ku ji xeynê binê erdê cih tune ku em wî malî tê de veşêrin. Heger Pêxemberê Xwedê (s.) ji daxwaziya mirinê men'a me nekiribûya, min dê daxwaziya mirinê bikira. Piştre em careke din jî çûne cem wî û ewî dîwarek lê dikir û ewî got: Bêguman misilman tiştê ku bixe vî erdê derve, ji bo her tiştî ku di rêya Xwedê de dimezixe xwedanxêr dibe. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine. (Ev lefzê Buxarî ye.)*

## بَابُ الْوَرَعِ وَتَرْكِ الشُّبُهَاتِ

## XWEPARISTINA JI GUNEHAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَتَحْسَبُونَهُ هَيِّناً وَهُوَ عِنْدَ الله عَظِيمٌ﴾.

"Hûn zen dikin ku (bêbextî) tiştekî kêm e. Ew bi xwe li cem Xwedê mezin e."[1]

﴿إِنَّ رَبَّكَ لَبِالْمِرْصَادِ﴾

"Xwedayê te li ber wan rawestayî ye."[2]

٥٨٨- وَعَنِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ الْحَلَالَ بَيِّنٌ، وَإِنَّ الْحَرَامَ بَيِّنٌ، وَبَيْنَهُمَا مُشْتَبِهاتٌ لَا يَعْلَمُهُنَّ كَثِيرٌ مِنَ النَّاسِ، فَمَنِ اتَّقَى الشُّبُهَاتِ، اسْتَبْرَأَ لِدِينِهِ وَعِرْضِهِ، وَمَنْ وَقَعَ فِي الشُّبُهَاتِ، وَقَعَ فِي الْحَرَام، كَالرَّاعِي يَرْعَى حَوْلَ الْحِمَى يُوشِكُ أَنْ يَرْتَعَ فِيهِ، أَلَا وَإِنَّ لِكُلِّ مَلِكٍ حِمَى، أَلَا وَإِنَّ حِمَى الله مَحَارِمُهُ، أَلَا وَإِنَّ فِي الْجَسَدِ مُضْغَةً إِذَا صَلَحَت صَلَحَ الْجَسَدُ كُلُّهُ، وَإِذَا فَسَدَتْ فَسَدَ الْجَسَدُ كُلُّهُ:

1 Nûr, 24/15.
2 Fecr, 89/14.

  

أَلَا وَهِيَ القَلْبُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

588- Nu'manê kurê Beşîr (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: "Miheqeq helal aşîkar bûye û heram jî aşîkar bûye û di navbera wan de hinek tiştê bi şik hene, gelekên mirovan bi wan tiştan nizanin. Vêca kî xwe ji tiştê bi şik biparêzê ewî dîn û 'irz û namûsa xwe parastiye û kê jî bikeve nav tiştê bişik ewê bikeve heramê. Wekî wî şivanê ku pezê xwe li dora pawanê diçêrîne nêzîk e ku bikeve tê de. Baldar bin! Bêguman ji her melikekî re pawanek heye. Hûn baldar bibin ku pawana Xwedê te'ala jî meharimê wî (yanî tiştê ku ewî heram kiriye) ne û dîsa hûn baldar bibin ku di cesed de qetek goşt heye, wextê ew baş be cesed hemû wê baş be û wextê ew xerab bibe cesed hemû jî wê xerab bibe; hûn bizanin ew dil e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٨٩- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ وَجَدَ تَمْرَةً فِي الطَّرِيقِ، فَقَالَ: (لَوْلَا أَنِّي أَخَافُ أَنْ تَكُونَ مِنَ الصَّدَقَةِ لأَكَلْتُهَا). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

589- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) di rê de xurmeyek dît û got: "Heger ez netirsiyama ku ev sedeqe ye minê ew bixwara." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٩٠- وَعَنِ النَّوَّاسِ بْنِ سَمْعَانَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (البِرُّ حُسْنُ الخُلُقِ، وَالإِثْمُ مَا حَاكَ فِي نَفْسِكَ، وَكَرِهْتَ أَنْ يَطَّلِعَ عَلَيْهِ النَّاسُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

590- Ji Newwassê kurê Sem'an (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Qencî exlaqê baş e û guneh jî ew e ku di dilê te de tê û diçe û tu naxwazî ku tu kes pê bihese." *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٩١-عَنْ وَابِصَةَ بْنِ مَعْبَدٍ ﷺ قَالَ: أَتَيْتُ رَسُولَ الله ﷺ فقَالَ:(أَجِئْتَ تَسْأَلُ عَنِ الْبِرِّ؟) قُلْتُ: نَعَمْ، فَقَالَ: (اسْتَفْتِ قَلْبَكَ، الْبِرُّ: مَا اطْمَأَنَّتْ إِلَيْهِ النَّفْسُ، واطْمَأَنَّ إِلَيْهِ القَلْبُ، وَالإِثْمُ مَا حَاكَ فِي النَّفْسِ وَتَرَدَّدَ فِي الصَّدْرِ، وَإِنْ أَفْتَاكَ النَّاسُ وَأَفْتَوكَ). حَدِيثٌ حَسَنٌ رَوَاهُ أَحْمَدُ وَالدَّارِمِي فِي مُسْنَدَيهِمَا.

591- Ji Wabiseyê kurê Me'bed (r.), got: Ez çûme cem Pêxemberê Xwedê (s.) û Ewî (s.) got: "Tu hatî ku pirsiyara qenciyê bikî?" Min got: Belê. Ewî (s.) got: "Tu ji dilê xwe pirsiyarê bike. Qencî ew e ku dil li ser mutme'în

dibe û guneh jî ew e ku di dil de nesekine û di singê de jî here û were (tereddudê bike). Çenda mirov ji bo te fetwayê jî bidin (yanî tu guhê xwe nede wan)." *Hedîs hesen e. Ehmed û Darimî her dukan jî di Musnedên xwe de rîwayet kirine.*

٥٩٢- وَعَنْ أَبِي سِرْوَعَةَ عُقْبَةَ بْنِ الْحَارِثِ ﷺ أَنَّهُ تَزَوَّجَ ابْنَةً لِأَبِي إِهَاب بْنِ عَزِيزٍ، فَأَتَتْهُ امْرَأَةٌ فَقَالَتْ: إِنِّي قَدْ أَرْضَعْتُ عُقْبَةَ وَالَّتِي قَدْ تَزَوَّجَ بِهَا، فَقَالَ لَهَا عُقْبَةُ: مَا أَعْلَمُ أَنَّكِ أَرْضَعْتِنِي وَلَا أَخْبَرْتِنِي، فَرَكِبَ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ بِالْمَدِينَةِ، فَسَأَلَهُ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (كَيْفَ، وَقَدْ قِيلَ) فَفَارَقَهَا عُقْبَةُ وَنَكَحَتْ زَوْجاً غَيْرَهُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

592- Ji Ebû Sirwe'e 'Uqbeyê kurê Haris (r.) hatiye rîwayetkirin ku 'Uqbe, bi keça Ebû Îhabê kurê 'Ezîz re zewicî. Lêbelê jinikek hate bal 'Uqbe û got: Min şîr daye 'Uqbe û wê jinika ku pê re zewicî. Vêca 'Uqbe ji wê re got: Ez nizanim te ez mêjandime û te bi vê yekê jî ez agahdar nekirime. 'Uqbe siwar bû û çû Medîneyê cem Pêxemberê Xwedê (s.) û ev yeka jê pirsiyar kir. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Çawa tê pê re bizewicî di halê ku ev yeka jî hatiye gotin?" Li ser vê gotinê 'Uqbe ew jinik berda û bi yeka din re zewicî. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٩٣- وعَنِ الْحَسَنِ بْنِ عَلِيٍّ ﷺ قَالَ: حَفِظْتُ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ: (دَعْ مَا يرِيبُكَ إِلَى مَا لَا يرِيبُكَ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

593- Ji Hesenê kurê 'Elî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) eva hanê di bîra xwe de girtiye: "Tiştê te têxe şikê bihêle û berê xwe bide wî tiştê ku te naxe şikê." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

٥٩٤- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ، قَالَتْ: كَانَ لِأَبِي بَكْرٍ الصِّدِّيقِ، غُلَامٌ يُخْرِجُ لَهُ الْخَرَاجَ، وَكَانَ أَبُو بَكْرٍ يَأْكُلُ مِنْ خَرَاجِهِ، فَجَاءَ يَوْماً بِشَيْءٍ، فَأَكَلَ مِنْهُ أَبُو بَكْرٍ، فَقَالَ لَهُ الْغُلَامُ: تَدْرِي مَا هَذَا؟ فَقَالَ أَبُو بَكْرٍ: وَمَا هُوَ؟ قَالَ: كُنْتُ تَكَهَّنْتُ لِإِنْسانٍ فِي الْجَاهِلِيَّةِ وَمَا أُحْسِنُ الكَهَانَةَ إِلَّا أَنِّي خَدَعْتُهُ، فَلَقِيَنِي، فَأَعْطَانِي بِذَلِكَ هَذَا الَّذِي أَكَلْتَ مِنْهُ، فَأَدْخَلَ أَبُو بَكْرٍ يَدَهُ فَقَاءَ كُلَّ شَيْءٍ فِي بَطْنِهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

  

594- Ji ‘Aîşe (r.), got: Xulamekî Ebû Bekirê Siddîq hebû û Ebû Bekir xerac danîbû ser wî. Ebû Bekir jî ji keda wî dixwar. Vêca ewî xulamî rojekê tiştek anî û Ebû Bekir jî jê xwar. Xulam ji Ebû Bekir re got: Qey tu dizanî eva çi bû? Ebû Bekir jî got: Ew çi bû? Xulam got: Min di dewra cahiliyetê de ji însanekî re kahîntî kir. Lêbelê min kahînî jî rind nizanîbû û min ew xapand. Vêca ew mirov rastî min hat û ew tiştê ku te xwar di hemberê wê kahîntiya min de da min. Li ser vê gotinê Ebû Bekir (r.) destê xwe kire devê xwe hemû tiştê di zikê xwe de vereşiya. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٩٥- وَعَنْ نَافِعٍ أَنَّ عُمَرَ بْنَ الْخَطَّابِ ﷺ كَانَ فَرَضَ لِلْمُهَاجِرِينَ الأَوَّلِينَ أَرْبَعَةَ آلاَفٍ، وَفَرَضَ لإِبْنِهِ ثَلاَثَةَ آلاَفٍ وَخَمْسَمِائَةٍ، فَقِيلَ لَهُ: هُوَ مِنَ الْمُهَاجِرِينَ فَلِمَ نَقَصَهُ؟ فَقَالَ: إِنَّمَا هَاجَرَ بِهِ أَبُوهُ، يَقُولُ: لَيْسَ هُوَ كَمَنْ هَاجَرَ بِنَفْسِهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

595- Ji Nafi‘ hatiye rîwayetkirin ku ‘Umerê kurê Xettab (r.) ji bo muhacirê pêşiyê çar hezar dirhem terxan kir û ji bo kurê xwe jî sê hezar û pêncsed dirhem terxan kir. Li ser vê yekê jê re hate gotin: Ew jî ji muhacira ye, te ji bo çi para wî kêm kiriye. Ewî (r.) got: Bêguman bavê wî jî bi wî re hîcret kir û ewî (r.) digot: Ew ne wekî yê ku bi xwe hîcret kiriye. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٥٩٦-وَعَنْ عَطِيَّةَ بْنِ عُرْوَةَ السَّعْدِيِّ الصَّحَابِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (لَا يَبْلُغُ الْعَبْدُ أَنْ يَكُونَ مِنَ الْمُتَّقِينَ حَتَّى يَدَعَ مَا لَا بَأْسَ بِهِ، حَذَراً لِمَا بِهِ بَأْسٌ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

596- Ji ‘Etiyyeyê kurê ‘Urwe es-Se‘dî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Ebdek bitirse ku bikeve guneha, heta xwe ji tiştê bêguneh jî neparêze ew nagihêje dereca ehlê teqwayê.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

## بَابُ إِسْتِحبَابِ الْعُزْلَةِ عِنْدَ فَسَادِ النَّاسِ وَالزَّمَانِ

## MUSTEHEBBÛNA TENÊMAYINÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

(فَفِرُّوا إِلَى اللهِ إِنِّي لَكُمْ مِنْهُ نَذِيرٌ مُبِينٌ) الذَّارِيَات ٥٠

“Vêca bi bal Xwedê ve bizivirin û ez ji bal wî bo we agahdar û aşîkar im.”[1]

1 Zariyat, 51/50.

٥٩٧- وَعَنْ سَعْد بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ اللَّهَ يُحِبُّ الْعَبْدَ التَّقِيَّ الْغَنِيَّ الْخَفِيَّ). رَوَاهُ مُسْلِم.

597- Ji Se'dê kurê Ebî Weqqas (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê bihîst, wiha digot: "Bêguman Xweda ji bendeyê mutteqî û dewlemend (yanî dil û çavê wî têr) û veşartî (yanî yê bi kar û kiryar û îbadetê xwe mijûl e û ne li ber çava ye) hezdike." *Muslim rîwayet kiriye.*

٥٩٨- وَعَنْ أَبِي سَعِيدِ الخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ رَجُلٌ: أَيُّ النَّاسِ أَفْضَلُ يَا رَسُولَ الله، قَالَ: (مُؤْمِنٌ مُجَاهِدٌ بِنَفْسِهِ وَمَالِهِ فِي سَبِيلِ اللَّهِ) قَالَ: ثُمَّ مَنْ؟ قَالَ: (ثُمَّ رَجُلٌ مُعْتَزِلٌ فِي شِعْبٍ مِنَ الشِّعَابِ يَعْبُدُ رَبَّهُ).

وَفِي رِوَايَةٍ: (يَتَّقِي اللَّهَ، وَيَدَعُ النَّاسَ مِنْ شَرِّهِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

598- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Mirovekî got: Ya Pêxemberê Xwedê, ji însanan kî qenctir e? Ewî (s.) got: "Mu'minê ku bi can û bi malê xwe di rêya Xwedê de dixebite." Ewî mirovî got: Piştre kî ye? Ewî (s.) got: "Piştre ew mirovê ku xwe ji însanan dûr digre û dikeve newalek ji newalan ji bo îbadetê Rebbê xwe."

Di rîwayeteke dîtir de: Ew mirovê ku ji Xwedê bitirse û xerabiya wî negihêje tu kesî. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥٩٩- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (يُوشِكُ أَنْ يَكُونَ خَيْرَ مَالِ الْمُسْلِمِ غَنَمٌ يَتَتَبَّعُ بِهَا شَعَفُ الْجِبَالِ، وَمَوَاقِعَ الْقَطْرِ يَفِرُّ بِدِينِهِ مِنَ الْفِتَنِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

599- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Nêzîk e ku baştirînê malê misilman bibe pezê ku mirov wan bibe serê çiyan û çêregehan, sedem dînê xwe ji fitneyan dûr bike." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٦٠٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَا بَعَثَ اللَّهُ نَبِيّاً إِلَّا رَعَى الْغَنَمَ) فَقَالَ أَصْحَابُهُ: وَأَنْتَ؟ قَالَ: (نَعَمْ، كُنْتُ أَرْعَاهَا عَلَى قَرَارِيطَ لِأَهْلِ مَكَّةَ). رَوَاهُ البُخَارِي.

600- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Xwedê tu Pêxember

  

neşandiye ku pez neçêrandibe." Eshaban gotin: Te jî? Ewî got: "Belê. Min jî ji bo ehlê Mekkeyê di hemberê hinek dirhem û dînar de pez çêrandiye." ***Buxarî rîwayet kiriye.***

٦٠١- وَعَنْهُ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: (مِنْ خَيْرِ مَعَاشِ النَّاسِ لَهُمْ رَجُلٌ مُمْسِكٌ عِنَانَ فَرَسِهِ فِي سَبِيلِ اللَّهِ يَطِيرُ عَلَى مَتْنِهِ، كُلَّمَا سَمِعَ هَيْعَةً أَوْ فَزْعَةً طَارَ عَلَيْهِ يَبْتَغِي الْقَتْلَ، أَوْ الْمَوْتَ مَظَانَّه، أَوْ رَجُلٌ فِي غُنَيْمَةٍ فِي رَأْسِ شَعَفَةٍ مِنْ هَذِهِ الشَّعَفِ، أَوْ بَطنِ وَادٍ مِنْ هَذِهِ الأَوْدِيَةِ يُقِيمِ الصَّلَاةَ، وَيُؤتِي الزَّكَاةَ، ويَعْبُدُ رَبَّهُ حَتَّى يَأْتِيَهُ الْيَقِينُ، لَيْسَ مِنَ النَّاسِ، إِلَّا فِي خَيْرٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

601- Dîsa ji wî (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Jîna/me'îşeta însanan ji wan re ya herî çêtir ew mirov e ku hefsarê hespê xwe di rêya Xwedê de bigire û çiqas feryadekî yan jî dengekî tirsê bibihîze li ser hespê xwe bifire û êrişê bide ciyê ku tê de bê kuştin yan ciyê tê de bimire. Yan jî ew mirov e ku di serê çiyakî de yan di newalekê de di nav pezê xwe de be, nimêja xwe bike, zikata xwe bide û heta roja bimire, îbadeta Rebbê xwe bike û ji xeynî qenciyê têkilî yê bi însanan re neke." ***Muslim rîwayet kiriye.***

## بَابُ فَضْلِ الإخْتِلَاطِ بِالنَّاسِ
## TÊKILIYA BI ÎNSANAN RE

اِعْلَمْ أَنَّ الإخْتِلَاطَ بِالنَّاسِ عَلَى الْوَجْهِ الَّذِي ذَكَرْتُهُ هُوَ الْمُخْتَارُ الَّذِي كَانَ عَلَيْهِ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَسَائِرُ الأَنْبِيَاءِ صَلَوَاتُ اللَّهِ وَسَلَامُهُ عَلَيْهِمْ، وَكَذَلِكَ الْخُلَفَاءُ الرَّاشِدُونَ وَمَنْ بَعْدَهُمْ مِنَ الصَّحَابَةِ وَمنْ بَعْدَهُمْ مِنْ عُلَمَاءِ الْمُسْلِمِينَ وَأَخْيَارِهِمْ،وَهُوَ مَذْهَبُ أَكْثَرِ التَّبِعِينَ وَمَنْ بَعْدَهُمْ،وَبِهِ قَالَ الشَّافِعِيُّ وَأَحْمَدُ وَأَكْثَرُ الْفُقَهَاءِ ﷺ أَجْمَعِينَ.

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى: ﴿وَتَعَاوَنُوا عَلَى الْبِرِّ وَالتَّقْوَى﴾

Tu bizane têkiliya bi însanan re li ser awayê ku min gotî, ew e rêya baş, ya ku Pêxemberê Xwedê (s.), hemû pêxemberên dîtir (s.), xelîfên raşid, yên piştî wan tên ku li eshab û tabi'î ne û yên piştî wan tên ku 'ulemayê misilmanan û başê wan in. Ev, ramanê gelekê tabi'în û yê ku li pey wan

tên. Îmamê Şafi'î û Îmamê Ehmed û pirê 'ulemayê fiqhê jî ev raman qebûl kirine (r.).

Xwedayê te'ala gotiye: ﴿وتَعَاوَنُوا عَلَى البرِّ والتَّقْوَى﴾ *"Hûn li ser başî û teqwayê (parêzgariya Xwedê) arîkariya hevdu bikin."*[1]

## بَابُ التَّوَاضُع وَخَفْض الجنَاح لِلْمُؤْمِنِين
## DILNIZMÎ/TEWAZÛ'

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَاخْفِضْ جَنَاحَكَ لِمَنِ اتَّبَعَكَ مِنَ الْمُؤْمِنِينَ﴾

"Çengê xwe ji bo bawermendên li pey te tên nizm bike."[2]

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا مَنْ يَرْتَدَّ مِنْكُمْ عَنْ دِينِهِ فَسَوْفَ يَأْتِي الله بِقَوْمٍ يُحِبُّهُم وَيُحِبُّونَهُ أَذِلَّةٍ عَلَى الْمُؤْمِنِينَ أَعِزَّةٍ عَلَى الْكَافِرِينَ﴾

"Gelî ewên bawerî anîne! Kî ji we ji dînê xwe vegere bi bal kufrê ve, wê Xwedê di ciyê wî de qewmekî bîne ku Xwedê ji wan hez dike û ew jî ji Xwedê hez dikin. Ewna ji mu'minan re dilnizm in û ji kafiran re jî xurt û serbilind in."[3]

﴿يَا أَيُّهَا النَّاسُ إِنَّا خَلَقْنَاكُمْ مِنْ ذَكَرٍ وَأُنْثَى وَجَعَلْنَاكُمْ شُعُوباً وَقَبَايِلَ لِتَعَارَفُوا إِنَّ أَكْرَمَكُمْ عِنْدَ اللَّهِ أَتْقَاكُمْ﴾

"Gelî mirovan! bi rastî me hûn ji nêr û mêyekê (zilam û jinekê) afirandin û me hûn kirin gel/milet û êl/'eşîr da ku hûn hevdu nas bikin. Bi rastî ji we yê li cem Xwedê ji hemûyan bêhtir bi rûmet ew e ku ji we hemûyan teqwatir e."[4]

﴿فَلَا تُزَكُّوا أَنْفُسَكُم هُوَ أَعْلَمُ بِمَنِ اتَّقَى﴾

"Vêca hûn pesnê xwe nedin. Ew (Xwedê) çêtir dizane ka kî bi teqwa ye."[5]

1 Ma'îde, 5/2.
2 Şu'era, 26/215.
3 Ma'îde, 5/54.
4 Hucurat, 49/13.
5 Necm, 53/32.

﴿وَنَادَى أَصْحَابُ الأَعْرَافِ رِجَالاً يَعرِفُونَهُم بِسِيمَاهُم قَالُوا مَا أَغْنَى عَنكُمْ جَمْعُكُم وَمَا كُنْتُمْ تَسْتَكْبِرُونَ ۝ أَهؤُلَاءِ الَّذِينَ أَقْسَمْتُم لَا يَنَالُهُمُ اللَّهُ بِرَحْمَةٍ ادْخُلُوا الْجَنَّةَ لَا خَوْفٌ عَلَيْكُمْ وَلَا أَنْتُم تَحْزَنُون﴾

"Xwedanê navberê (E'rafê) gazî hinek zilaman (yê cehennemê) kir, bi ser û çavê wan ewan nas dike û gotin: Komkirin (a mal û xulaman) û xwe mezinkirin tu feyde neda we. Ma ev in yê we sond xwarî ku Xwedê rehmê li wan nake! Bikevin cennetê. Ne ji we re tirs heye ne jî hûn dihezînin."[1]

٦٠٢-وَعَنْ عِيَاضِ بْنِ حِمَارٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ اللَّهَ أَوْحَى إِلَيَّ أَنْ تَوَاضَعُوا حَتَّى لَا يَفْخَرَ أَحَدٌ عَلَى أَحَدٍ، وَلَا يَبْغِيَ أَحَدٌ عَلَى أَحَدٍ). رَوَاهُ مُسْلِم.

602- Ji 'Iyazê kurê Hîmar (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman Xweda te'ala ji min re wehî kir ku hûn ji hevdu re dilnizmiye bikin heta ku tu kes li ser tu kesî fexrê/qurretiyê neke û tu kes neheqiyê li tu kesî neke." *Muslim rîwayet kiriye.*

٦٠٣- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُول الله ﷺ قَالَ: (مَا نَقَصَتْ صَدَقَةٌ مِنْ مَالٍ، وَمَا زَادَ اللَّهُ عَبْداً بِعَفْوٍ إِلَّا عِزّاً، وَمَا تَوَاضَعَ أَحَدٌ لِلهِ إِلَّا رَفَعَهُ الله). رَوَاهُ مُسْلِم.

603- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Sedeqe, ji mal kêm nake û ebdê ku dibexşîne jî Xweda ancax serbilindiya wî zêde dike. Ew mirovê ku xwe ji bo Xwedê dişkîne, Xwedê jî ancax ewî bilind dike." *Muslim rîwayet kiriye.*

٦٠٤- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّهُ مَرَّ عَلَى صِبْيَانٍ فَسَلَّمَ عَلَيْهِمْ وَقَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يَفْعَلُهُ.

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

604- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku ew di ber hinek zarokan re derbas bû, silav li wan kir û got: Pêxemberê Xwedê (s.) jî wiha dikir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 E'raf, 7/48-49.

٦٠٥- وَعَنْهُ قَالَ: إِنْ كَانَتِ الأَمَةُ مِنْ إِمَاءِ أَهْلِ الْمَدِينَةِ لَتَأْخُذُ بِيَدِ النَّبِيِّ ﷺ فَتَنْطَلِقُ بِهِ حَيْثُ شَاءَتْ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

605- Dîsa ji wî (r.), got: Qîzikek piçûk ji qîzikên Medîneyê bi destê Pêxemberê Xwedê (s.) digirt û Pêxemberê Xwedê (s.) heta ciyê ku wê diviya digel wê diçû (ka ihtiyaciya wê çi ye pêkdianî). *Buxarî rîwayet kiriye.*

٦٠٦- وَعَنْ الأَسْوَدِ بْنِ يَزِيدَ قَالَ: سُئِلَتْ عَائِشَةَ ﵂: مَا كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يَصْنَعُ فِي بَيْتِهِ؟ قَالَتْ: كَانَ يَكُونُ فِي مِهْنَةِ أَهْلِهِ يَعْنِي- خِدْمَةِ أَهْلِهِ- فَإِذَا حَضَرَتِ الصَّلاَةُ خَرَجَ إِلَى الصَّلاَةِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

606- Ji Eswedê kurê Yezîd (r.), got: Ji Hz. 'Aîşe (r.) hate pirsiyar kirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) di mala xwe de çi kar dikir? Ewê got: Ew (s.) di xizmeta ehlê xwe de bû û dema wextê nimêjê dihat ew (s.) diçû nimêjê. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٦٠٧- وَعَنْ أَبِي رِفَاعَةَ تَمِيم بْنِ أُسَيدٍ ﵁ قَالَ: انْتَهَيْتُ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وهو يَخْطُبُ، فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ الله رَجُلٌ غَرِيبٌ جَاءَ يَسْأَلُ عَنْ دِينِهِ لَا يَدْرِي مَا دِينُهُ فَأَقْبَلَ عَلَيَّ رَسُولُ الله ﷺ وَتَرَكَ خُطْبَتَهُ حَتَّى انْتَهى إِلَيَّ، فَأُتِيَ بِكُرْسِيٍّ، فَقَعَدَ عَلَيْهِ، وَجَعَلَ يُعَلِّمُنِي مِمَّا عَلَّمَه الله، ثُمَّ أَتَى خُطْبَتَهُ، فَأَتَمَّ آخِرَهَا. رَوَاهُ مُسْلِم.

607-Ji Ebû Rifae'ê Temîmê kure Useyd (r.), got: Ez çûme cem Pêxemberê Xwedê (s.) welhal wî (s.) xutbe dixwend. Min got: Ya Pêxemberê Xwedê, mirovekî belengaz ku dînê xwe nizane hat, wê pirsiyara dînê xwe bike. Li ser vê gotinê Pêxemberê Xwedê (s.) berê xwe da min, xutba xwe hişt û hate bal min. Ji Pêxemberê Xwedê re kursiyek hate anîn, ew (s.) li ser wî kursiyî rûnişt û tiştê ku Xwedê bi wî daye zanîn bi min de zanîn û piştre xutba xwe ya mayin xelas kir. *Muslim rîwayet kiriye.*

٦٠٨- وَعَنْ أَنَسٍ ﵁ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ إِذَا أَكَلَ طَعَاماً لَعِقَ أَصَابِعَهُ الثَّلاَثَ، قَالَ: وَقَالَ: (إِذَا سَقَطَتْ لُقْمَةُ أَحَدِكُمْ، فَلْيُمِطْ عَنْهَا الأَذَى، وَلْيَأْكُلْهَا، وَلَا يَدَعْهَا لِلشَّيْطَانِ)

وَأَمَرَ أَنْ تُسْلَتَ الْقَصْعَةُ، قَالَ: (فَإِنَّكُمْ لَا تَدْرُونَ فِي أَيِّ طَعَامِكُمُ البَرَكَةُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

608- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku wextê Pêxemberê Xwedê (s.) xwarin dixwar sê tiliyê xwe dialast (tiliya beranekê û tiliya şehdê û tiliya navçarê) Vêca ewî (s.) digot: "Wextê pariyê yekî ji we bikeve bila paqij bike û bixwe û bila ji şeytan re nehêle." Û wî (s.) emir dikir ku firaxa xwarinê bête alastin û digot: "Lewra hûn nizanin ka di kîjan xwarina we de bereket heye." *Muslim rîwayet kiriye.*

٦٠٩- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَا بَعَثَ الله نَبِيّاً إِلَّا رَعَى الْغَنَمَ) قَالَ أَصْحَابُهُ: وَأَنْتَ؟ فَقَالَ: (نَعَمْ، كُنْتُ أَرْعَاهَا عَلَى قَرَارِيطَ لِأَهْلِ مَكَّةَ). رَوَاهُ البُخَارِي.

609- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Xwedê tu Pêxember neşandiye ku pez neçêrandibe." Eshaban gotin: Te jî? Ewî got: "Belê. Min jî ji bo ehlê Mekkeyê di hemberê hinek dirhem û dînar de pez çêrandiye." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٦١٠- وَعَنْهُ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَوْ دُعِيتُ إِلَى كُرَاعٍ أَوْ ذِرَاعٍ لَأَجَبْتُ، وَلَوْ أُهْدِيَ إِلَيَّ ذِرَاعٌ أَو كُرَاعٌ لَقَبِلْتُ). رَوَاهُ البُخَارِي.

610- Dîsa ji wî (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Heger ez bême gazîkirin bi bal xwarina ser û pêpêkan ve ezê îcabet bikim û eger ser û pêpêk ji min re bêne hediye kirin ezê qebûl bikim." *Buxarî riwayet kiriye.*

٦١١- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: كَانَتْ نَاقَةُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ العَضْبَاءُ لَا تُسْبَقُ، أَوْ لَا تَكَادُ تُسْبَقُ، فَجَاءَ أَعْرَابِيٌّ عَلَى قَعُودٍ لَهُ، فَسَبَقَهَا، فَشَقَّ ذَلِكَ عَلَى الْمُسْلِمِينَ حَتَّى عَرَفَهُ، فَقَالَ: (حَقٌّ عَلَى اللَّهِ أَنْ لَا يَرْتَفِعَ شَيْءٌ مِنَ الدُّنْيَا إِلَّا وَضَعَهُ). رَوَاهُ البُخَارِي.

611- Ji Enes (r.), got: Hêştira Pêxemberê Xwedê (s.) ya guhqelaştî tu hêştir lê derbaz nedibûn û nedikarîn ku jê derbaz bin jî. Vêca rojekê mirovekî bedewî bi hêştira xwe hat û ji wê derbas bû û pêşiya wê ket. Vêca ev yeka li xweşa misilmanan nehat, heta ku Pêxemberê Xwedê (s.) jî zanî ev yeka li xweşa misilmanan neçûye û wî (s.) got: "Heqe li ser Xwedê te'ala ku tiştê di dunyayê de bilind bibe ewî nizim bike." *Buxarî riwayet kiriye.*

## بَابُ تَحْرِيمِ الْكِبرِ وَالإعْجَاب
## QURRETÎ/KIBIR

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿تِلْكَ الدَّارُ الآخِرَةُ نَجْعَلُهَا لِلَّذِينَ لَا يُرِيدُونَ عُلُوّاً فِي الأَرْضِ وَلَا فَسَاداً وَالْعَاقِبَةُ لِلْمُتَّقِينَ﴾

"Eva te bihîstî û salixê wê ji bo te hatiye jîna axîretê ye. Emê wê bidine wanê ku di erdê de ne mezinatî, ne sîtem û ne ji xerabi divên. Û domahîka baş her ya parêzgeran e."[1]

﴿وَلَا تَمْشِ فِي الأَرْضِ مَرَحاً﴾

"Bi şahî û bi mezinatî li ser erdê bi rê ve neçe."[2]

﴿وَلَا تُصَعِّرْ خَدَّكَ لِلنَاسِ وَلَا تَمْشِ فِي الأَرْضِ مَرَحاً إِنَّ اللهَ لَا يُحِبُّ كُلَّ مُخْتَالٍ فَخُورٍ﴾

"(Kurê min) ji qurretî rûyê xwe ji xelkê nefetilîne û bi pozbilindî bi rê ve neçe. Bêguman Xweda, ji hemî pozbilindê bifexr hez nake."[3]

﴿إِنَّ قَارُونَ كَانَ مِنْ قَوْمِ مُوسَى فَبَغَى عَلَيْهِمْ وآتَيْنَاهُ مِنَ الكُنُوزِ مَا إِنَّ مَفَاتِحَهُ لَتَنُوءُ بِالْعُصْبَةِ أُولِي القُوَّةِ إِذْ قَالَ لَهُ قَوْمُه لَا تَفْرَحْ إِنَّ اللهَ لَا يُحِبُّ الفَرِحِينَ﴾ إِلَى قوْلِهِ تَعَالَى ﴿فَخَسفْنَا بِهِ وَبِدَارِهِ الأَرْضَ﴾

"Bi rastî Qarûn ji miletê Mûsa bû. Vêca xwe li ser serê miletê xwe mezin kir û sîtem li wan kir. Me hinek xezîne dabûnê, ku rakirina kilîtê wan jî di destê zilamên bi hêz de bû. Wextê miletê wî (yê bawerî pê neanîne) gotinê: Tu betran nebe, bi rastî Xweda ji betranan hez nake. Û bi wî tiştê ku Xwedê daye te axîretê bixwaze, para xwe ji dunyayê jî jibîr neke û çawa ku Xwedê qencî digel te kiriye tu ji wisa qenciyê (digel bende yê wî) bike û li pey xerabiyê negere. Bi rastî Xweda ji xerabîkaran hez nake. Qarûn got: Bi rastî (ev dewlemendî û ev mal) min bi zanebûna xwe bi destxist. Qey wî nedizanî ku bi rastî Xweda beriya wî gelek miletê ji wî bihêztir

1 Qeses, 28/83.
2 Îsra, 17/37.
3 Loqman, 31/18.

û têrmaltir helak kir? Û pirsiyara gunehkaran ji gunehê wan (hingî zahf e) nayê kirin. Vêca (carekî) Qarûn bi xeml û bi xêz û keşxe ya xwe derkete nav miletê xwe. Ewên heyata dunyayê dixwestin gotin: Bi rastî ew xwedanbextekî mezin e. Ewên zana gotin: Wey ji bo we, xelatê Xwedê ji bo wanê bawerî anîn û kar û kiryarê baş kirin çêtir e û ji xeynê sebirkêşan jî kes nagihêje vê xelatîê. Vêca me ew bi mal û xanî ve di erdê de bire xwar û ji xeynê Xwedê, kesek ku arîkariya wî bikin tunebû û ew bi xwe jî nedikarî ku arîkariya xwe bike."[1]

٦١٢- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: لَا يَدْخُلِ الْجَنَّةَ مَنْ كَانَ فِي قَلْبِهِ مِثْقَالُ ذَرَّةٍ مِنْ كِبْرٍ) فقَالَ رَجُلٌ: إِنَّ الرَّجُلَ يُحِبُّ أَنْ يَكُونَ ثَوْبُه حَسَناً، وَنَعْلُهُ حَسَناً، فَقَالَ: (إِنَّ اللَّهَ جَمِيلٌ يُحِبُّ الْجَمَالَ. الكِبْرُ بَطَرُ الْحَقِّ، وَغَمْطُ النَّاسِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

612- Ji 'Ebdullahe kurê Mes'ûd (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî di dilê wî de qasî zerekê jî qurretî hebe naçe cennetê." Li ser vê yekê miroveki got: Miheqeq mirov hez dike ku cilê wî rind be û sola wî rind be. Îcar Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bêguman Xweda rind e û ji rindiyê jî hez dike. Lêbelê qurretî, qebûlnekirina heqiyê û kêmdîtina însanan e." *Muslim rîwayet kiriye.*

٦١٣- وَعَنْ سَلَمَةَ بْنِ الأَكْوَعِ ﷺ أَنَّ رَجُلاً أَكَلَ عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ بِشِمَالِهِ، فَقَالَ: (كُلْ بِيَمِينِكَ) فقَالَ: لَا أَسْتَطِيعُ قَالَ: (لَا اسْتَطَعْتَ) مَا مَنَعَهُ إِلَّا الْكِبْرُ، قَالَ: فَمَا رَفَعَهَا إِلَى فِيهِ. رَوَاهُ مُسْلِم.

613- Ji Selemeyê kurê Ekwa' (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovek li bal Pêxemberê Xwedê (s.) bi destê xwe yê çepê xwarin xwar. Vêca ewî (s.) got: "Bi destê rastê bixwe." Ewî mirovî got: Ez nikarim. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Qet tu nikaribî." Ji xeynê qurretiyê tiştekî men'a wî nekiribû. Rawî got: Edî wî mirovî nekarî destê xwe bibe bal devê xwe ve. *Muslim rîwayet kiriye.*

٦١٤- وَعَنْ حَارِثَةَ بْنِ وَهْبٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (أَلَا أُخْبِرُكُم بِأَهْلِ النَّارِ؟ كُلُّ عُتُلٍّ جَوَّاظٍ مُسْتَكْبِرٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1 Qeses, 28/76-81.

614- Ji Hariseyê kurê Wehb (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Ez we agahdar bikim ku ka ehlê êgir kî ne? Her kesê ku malê xwe ji dayina di xêrê de men‘ dike û qurre ye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦١٥- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (احْتَجَّتِ الْجَنَّةُ وَالنَّارُ، فَقَالَتِ النَّارُ: فِيَّ الْجَبَّارُونَ وَالْمُتَكَبِّرُونَ، وَقَالَتِ الْجَنَّةُ: فِيَّ ضُعَفَاءُ النَّاسِ وَمَسَاكِينُهُمْ، فَقَضَى الله بَيْنَهُمَا: إِنَّكِ الْجَنَّةُ رَحْمَتِي أَرْحَمُ بِكِ مَنْ أَشَاءُ، وَإِنَّكِ النَّارُ عَذَابِي أُعَذِّبُ بِكِ مَنْ أَشَاءُ، وَلِكِلَيْكُمَا عَلَيَّ مِلْؤُهَا). رَوَاهُ مُسْلِم.

615- Ji Ebû Se‘îdê Xudrî (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Cennet û cehennemê munaqeşe kirin. Cehennemê got: “Sîtemkar û qurre li bal min in, cennetê jî got: Jar û belengazên însanan jî li bal min in. Xwedê di navbera wan de wiha darizand "Cennet tu rehmeta min î, ez ji kê hez bikim ezê bi te rehmê li wan bikim. Cehennem tu jî ‘ezabê min î, ez kê bivêm ezê bi te wan ‘ezabdar bikim. Û tijîbûna we her duyan jî li ser m *Muslim rîwayet kiriye.*

٦١٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (لَا يَنْظُرُ اللَّهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ إِلَى مَنْ جَرَّ إِزَارَهُ بَطَراً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

616- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Xweda te‘ala, roja qiyametê li wî kesê ku bi qurretî dawa xwe bi erdê ve dikêşîne, nanihêre.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦١٧- وعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (ثَلاثَةٌ لَا يُكَلِّمُهُمُ اللَّهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، وَلَا يُزَكِّيهِمْ، وَلَا يَنْظُرُ إِلَيْهِمْ، وَلَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ: شَيْخٌ زَانٍ، وَمَلِكٌ كَذَّابٌ، وَعَائِلٌ مُسْتَكْبِرٌ). رَوَاهُ مُسْلِم.

617- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Sê cure mirov hene, Xwedê te‘ala roja qiyametê bi wan re naaxive, wan tezkiye nake (yanî kar û kiryarê wan ji wan qebûl nake), li wan nanîhêre û ji wan re ‘ezabek bi êş jî heye: Pîrê zinaker, sultanê derewker û feqîrê qurre.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٦١٨- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: يَقُولُ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ: الْعِزُّ إِزَارِي، وَالْكِبْرِيَاءُ

رِدَائِي، فَمَنْ يُنَازِعُنِي عَذَّبْتُهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

618- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedê 'ezze we celle dibêje: "'Ezîzî pêşmalka min e, qurretî jî kurkê min e. Vêca kî li ber min re serî hilde, ezê jî wî 'ezabdar bikim." *Muslim rîwayet kiriye.*

٦١٩- وَعَنْهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (بَيْنَمَا رَجُلٌ يَمْشِي فِي حُلَّةٍ تُعْجِبُهُ نَفْسُهُ مُرَجِّلٌ رَأْسَهُ، يَخْتَالُ فِي مِشْيَتِهِ، إِذْ خَسَفَ الله بِهِ، فَهُوَ يَتَجَلْجَلُ فِي الأَرْضِ إِلَى يَوْمِ الْقِيَامَةِ).

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

619- Dîsa ji wî hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Rojekê mirovek di nav kurkê xwe de qurre dimeşiya. Serê xwe şehkiri bû û di rêçûna xwe de jî xwe mezin dikir. Di wê demê de Xwedê ew bin çal kir û êdî ew jî heta roja qiyametê wê di bin erdê de be." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٢٠- وَعَنْ سَلَمَةَ بنِ الأَكْوَعِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا يَزَالُ الرَّجُلُ يَذْهَبُ بِنَفْسِهِ حَتَّى يُكْتَبَ فِي الْجَبَّارِينَ، فَيُصِيبَهُ مَا أَصَابَهُمْ) رَوَاهُ التِّرْمِذِي. وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

620- Ji Selemeyê kurê Ekwe' (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mirov hingî xwe qurre dike di navbera quran de tê nîvîsandin, vêca ew tiştê tê serê wan, tê serê wî jî." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

## بَابُ حُسْنِ الْخُلُقِ
## EXLAQÊ XWEŞ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَإِنَّكَ لَعَلَى خُلُقٍ عَظِيمٍ﴾

"(Ya Muhemmed) Bêguman tu xwedanê exlaqekî zêde pak û bilind î."[1]

﴿وَالْكَاظِمِينَ الْغَيْظَ وَالْعَافِينَ عَنِ النَّاسِ﴾

"Û kerba xwe vedişêrin (ji kerban sîtemê li kesî nakin) û xelkê azad dikin."[2]

1 Qelem, 68/4.
2 Alî 'Îmran, 3/134.

٦٢١- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ أَحْسَنَ النَّاسِ خُلُقاً. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

621- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.), exlaqxweştirînê însanan bû. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٢٢- وعَنْهُ قَالَ: مَا مَسَسْتُ دِيبَاجاً وَلَا حَرِيراً أَلْيَنَ مِنْ كَفِّ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَلَا شَمَمْتُ رَائِحةً قَطُّ أَطْيَبَ مِنْ رَائحَةِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَلَقَدْ خَدَمْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ عَشْرَ سِنِينَ، فَمَا قَالَ لِي قَطُّ: أُفٍّ، وَلَا قَالَ لِشَيْءٍ فَعَلْتُهُ: لِمَ فَعَلْتَهُ؟ وَلَا لِشَيْءٍ لَمْ أَفْعَلْهُ: أَلَا فَعَلْتَ كَذَا. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

622- Ji Enesê kurê Malik (r.), got: Min ji keffa destê Pêxemberê Xwedê (s.) nermtir ne etles ne jî hevrîşim dît û min ji bêhna Pêxemberê Xwedê (s.) xweştir jî tu bêhn bêhn nekiriye. Min deh salan xizmeta Pêxemberê Xwedê (s.) kir, lê ewî (s.) tu car ji min re 'of!' jî negot û ji bo tiştekî ku min kirî tu car negot, te çima kiriye? Û ji bo tiştê min nekirî jî negot xwezî te wisa kiribûya. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٢٣- وَعَنِ الصَّعْبِ بْنِ جَثَّامَةَ ﷺ قَالَ: أَهْدَيْتُ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ حِمَاراً وَحْشِيّاً، فَرَدَّهُ عَلَيَّ، فَلَمَّا رَأَى مَا فِي وَجْهِي قَالَ: (إِنَّا لَمْ نَرُدَّهُ عَلَيْكَ إِلَّا أَنَّا حُرُمٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

623- Ji Se'bê kurê Cessame (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) re merkebekê kovî hediye kir, lê ewî (s.) qebûl nekir. Vêca wextê wî (s.) dît ku rengê min çû wiha got: "Me ew bes ji bona ku em di ihramê de ne qebûl nekir (ne ji bo tiştek dîtir)." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٢٤- وَعَنِ النَّوَّاسِ بْنِ سَمْعَانَ ﷺ قَالَ: سَأَلْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ عَنِ الْبِرِّ وَالإِثْمِ فَقَالَ: (الْبِرُّ: حُسْنُ الخُلُقِ، وَالإِثْمُ: مَا حَاكَ فِي نَفْسِكَ، وَكَرِهْتَ أَنْ يَطَّلِعَ عَلَيْهِ النَّاسُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

624- Ji Newasê kurê Sem'an (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) pirsiyara xêr û gunehan kir, ewî (s.) got: "Xêr, exlaqê xweş e û guneh jî ew tiştê e ku di dilê te de diçe tê û tu naxwazî ku tu kes bi wê bihese." *Muslim rîwayet kiriye.*

  

٦٢٥- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ العَاصِ ﷺ قَالَ: لَمْ يَكُنْ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَاحِشاً وَلَا مُتَفَحِّشاً، وَكَانَ يَقُولُ: (إِنَّ مِنْ خِيَارِكُم أَحْسَنَكُمْ أَخْلَاقاً). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمْ.

625- Ji ‘Ebdullahê kurê ‘Emrê kurê ‘As (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ne çêrker û ne jî gotintehl bû û ewî (s.) digot: Qenctirînê we, exlaqxweştirînê we ye. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٢٦- وَعَنْ أَبِي الدَّرْدَاءِ ﷺ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (مَا مِنْ شَيءٍ أَثْقَلُ فِي مِيزَانِ الْمُؤْمِنِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ مِنْ حُسْنِ الخُلُقِ، وَإِنَّ اللَّهَ يُبْغِضُ الفَاحِشَ الْبَذِيَّ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

626-Ji Ebûd-Derda (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Di roja qiyametê de, di şehîna mu’minî de tu tiştek ji exlaqê qenc girantir tune û bêguman Xweda te‘ala ji mirovê cirrnexweş hez nake.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

٦٢٧- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: سُئِلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنْ أَكْثَرِ مَا يُدْخِلُ النَّاسَ الْجَنَّةَ؟ فَقَالَ: (تَقْوَى الله وَحُسْنُ الخُلُقِ) وَسُئِلَ عَنْ أَكْثَرِ مَا يُدْخِلُ النَّاسَ النَّارَ، فَقَالَ: (الْفَمُ وَالفَرْجُ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

627- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Ji Pêxemberê Xwedê (s.) tiştê zehftir mirova dibe cennetê hate pirsiyar kirin. Ewî (s.) got: “Tirsa ji Xwedê û exlaqê qenc e.” Û ji tiştê zehftir mirovan dibe cehennemê jî hate pirsiyar kirin, vêca ewî (s.) got: “Dev û şehwet e.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

٦٢٨- وعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَكْمَلُ الْمُؤْمِنِينَ إِيْمَاناً أَحْسَنُهُم خُلُقاً، وَخِيَارُكُمْ خِيَارُكُمْ لِنِسَائِهِمْ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

628- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Îman-kamiltirînê mu’minan ew in, yên ku herî exlaqxweş in. Û qenctirînê we jî ew in, yên ku ji jinên xwe re herî qenc in.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

٦٢٩- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ، قَالَتْ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ الْمُؤْمِنَ لَيُدْرِكُ بِحُسْنِ خُلُقِهِ دَرَجَةَ الصَّائِمِ الْقَائِمِ). رواه أبو دَاوود.

629- Ji 'Aîşe (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Bêguman mumin bi exlaqê xweş digihêje dereca rojîkerê qaîm (bi şev xweyî îbadet)." *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

٦٣٠- وَعَنْ أَبِي أُمَامَةَ الْبَاهِلِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَنَا زَعِيمٌ بِبَيْتٍ فِي رَبَضِ الْجَنَّةِ لِمَنْ تَرَكَ المِرَاءَ، وَإِنْ كَانَ مُحِقًّا، وَبِبَيْتٍ فِي وَسَطِ الجَنَّةِ لِمَن تَرَكَ الكَذِبَ، وَإِنْ كَانَ مَازِحاً، وَبِبَيْتٍ فِي أَعْلَى الْجَنَّةِ لِمَنْ حَسُنَ خُلُقُهُ). حَدِيثٌ صَحِيحٌ رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

630- Ji Ebû Umameyê el-Bahilî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ez ji bo wî kesê ku xwedanheq e jî û terka munaqeşê dike, dibim kefîlê malekê di hewşa cennetê de ye. Dîsa ez ji bo wî kesê ku bi henekî be jî derewan nake kefîlê malekê me ku di naverasta cennetê de ye û dîsa jî ez ji bo wî kesê ku exlaqê wî xweş e kefîlê malekê me di jora cennetê de ye." *Hedîseke sehîh e. Ebû Dawûd bi senedek sehîh rîwayet kiriye.*

٦٣١- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّ مِنْ أَحَبِّكُم إِلَيَّ، وَأَقْرَبِكُم مِنِّي مَجْلِساً يَوْمَ الْقِيَامَةِ، أَحَاسِنَكُمْ أَخْلَاقاً، وَإِنَّ أَبْغَضَكُمْ إِلَيَّ، وَأَبْعَدَكُمْ مِنِّي يَوْمَ الْقِيَامَةِ، الثَّرْثَارُونَ وَالْمُتَشَدِّقُونَ وَالْمُتَفَيْهِقُونَ) قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ قَدْ عَلِمْنَا الثَّرْثَارُونَ وَالْمُتَشَدِّقُونَ فَمَا الْمُتَفَيْهِقُونَ؟ قَالَ: (الْمُتَكَبِّرُونَ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

وَرَوَى التِّرْمِذِيُّ عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ الْمُبَارَكِ رَحِمَهُ اللَّهُ فِي تَفْسِيرِ حُسْنِ الْخُلُقِ، قَالَ: هُوَ طَلَاقَةُ الْوَجْهِ وَبَذْلِ الْمَعْرُوفِ وَكَفُّ الأَذَى.

631- Ji Cabirê (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s. gotiye:"Bêguman di roja qiyametê de, yên ku ez herî pir ji wan hez dikim û herî nêzîkî min, exlaqxweşên we ne. Û bêguman di roja qiyametê de yên ku ez herî pir ji wan hêrs dibim û herî dûrî min, yên ku bi awayê sun'î zêde dipeyvin, yên ku axaftina xwe dirêj dikin û devê xwe pê re tijî dikin û yên "*muteşeddeqûn*" in. Eshaban gotin, ya Pêxemberê Xwedê! Me herduyên pêşîn fam kirin, lê gelo '*muteşeddeqûn*' kî ne? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ewana jî ew in, yên ku bi qurretî û pozbilindî devê xwe fireh dikin û diaxivin."*Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

Tirmizî, tefsîra *exlaqê xweş* ji 'Ebdullahê kurê Mubarek (r.) wisa rîwayet kiriye: "Ew (exlaqê xweş); rûyê geş, dayina qenciyê û nedana eziyetê ye."

# بَابُ الْحِلْمِ وَالأَنَاةِ وَالرِّفْقِ
# RÛNERMÎ Û BÊHNFIREHÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَالْكَاظِمِينَ الْغَيْظَ وَالْعَافِينَ عَنِ النَّاسِ وَاللَّهُ يُحِبُّ الْمُحْسِنِينَ﴾

*"Û kerba xwe vedişêrin (ji kerban sîtemê li kesî nakin) û xelkê efû dikin. Xwedê jî ji qencîkaran hez dike."*[1]

﴿خُذِ الْعَفْوَ وَأْمُرْ بِالْعُرْفِ وَاعْرِضْ عَنِ الْجَاهِلِينَ﴾

*"Aliyê sanahî bigre, fermanê bi kar û kiryarê qenc bike û rûyê xwe ji nefêman wergire."*[2]

﴿وَلَا تَسْتَوِي الْحَسَنَةُ وَلَا السَّيِّئَةُ ادْفَعْ بِالَّتِي هِيَ أَحْسَنُ فَإِذَا الَّذِي بَيْنَكَ وَبَيْنَهُ عَدَاوَةٌ كَأَنَّهُ وَلِيٌّ حَمِيمٌ ۞ وَمَا يُلَقَّاهَا إِلَّا الَّذِينَ صَبَرُوا وَمَا يُلَقَّاهَا إِلَّا ذُو حَظٍّ عَظِيمٍ﴾

*"Başî û xerabî wekî hevdu nabin; ya çêtir, xerabiyê pê nehêle. Heger te eva kir, hingî yê ku navbera te û wî de dijminayî heye wê wekî hevalekî nêzîk û dilsoz be. Kes nagihêje vê pîleyê (ku başiyê şûna xerabiyê deyne), ancax ewê sebirkêş ne tê de. Û kes nagihêjê, ancax ewê xwedanxêreke mezin ne tê de."*[3]

(وَلِمَنْ صَبَرَ وَغَفَرَ إِنَّ ذَلِكَ لَمِنْ عَزْمِ الأُمُورِ)

*"Yê sebrê (li ser zilmê) bikêşe û (li zordarê xwe) bibore. Ev (sebirkêşî û lêborîn) ji karê mezin in."*[4]

٦٣٢- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لأَشَجِّ عَبْدِ الْقَيْسِ: (إِنَّ فِيكَ خَصْلَتَيْنِ يُحِبُّهُمَا اللَّهُ: الْحِلْمُ وَالأَنَاةُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

632- Ji kurê 'Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji Eşecc Ebdul-Qeys re got: Di te de du xesletên ku Xwedê te'ala jê hezdikin hene: Rûnermî û bêhnfirehî. *Muslim rîwayet kiriye.*

1 Alî 'Îmran, 3/134.
2 E'raf, 7/199.
3 Fussîlet, 41/34-35.
4 Şûra, 42/43.

٦٣٣- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ اللَّهَ رَفِيقٌ يُحِبُّ الرِّفْقَ فِي الأَمْرِ كُلِّهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

633- Ji ‘Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Bêşik Xwedê te‘ala xweşxû ye û di temamê kar û kiryaran de ji xweşxûtiyê hez dike.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٣٤-وَعَنْهَا أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ اللَّهَ رَفِيقٌ يُحِبُّ الرِّفْقَ، وَيُعْطِي عَلَى الرِّفْقِ مَا لَا يُعْطِي عَلَى الْعُنْفِ، وَمَا لَا يُعْطِي عَلَى مَا سِوَاهُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

634- Dîsa ji wê (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Xwedê te‘ala xweşxû ye û ji xweşxûtiyê jî hezdike, Xwedê xêr û sewaba ku nade hişkîtiyê û xeynê wê dide xweşxûtiyê.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٦٣٥- وعَنْهَا أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ الرِّفْقَ لَا يَكُونُ فِي شَيْءٍ إِلَّا زَانَهُ، وَلَا يُنْزَعُ مِنْ شَيْءٍ إِلَّا شَانَهُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

635- Dîsa ji wê (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Xweşxûtî di çi de hebe miheqeq ewê rind dike û ji çi jî rabe ewê dilewitîne.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٦٣٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: بَالَ أَعْرَابِيٌّ فِي الْمَسجِدِ، فَقَامَ النَّاسُ إِلَيْهِ لِيَقَعُوا فِيهِ، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: دَعُوهُ وَأَرِيقُوا عَلَى بَوْلِهِ سَجْلاً مِنْ مَاءٍ، أَوْ ذَنُوباً مِنْ مَاءٍ، فَإِنَّمَا بُعِثْتُمْ مُيَسِّرِينَ وَلَمْ تُبْعَثُوا مُعَسِّرِينَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

636- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Mirovekî bedewî di mizgeftê de mîz kir, vêca mirovê wê derê rabûn ku gotinên xerab jê re bêjin. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Wî berdin (têkilî wî nebin) û satilek av birêjînin ser mîza wî. Lewra hûn hatine şandin ku hûn hêsan bikin, hûn nehatine şandin ku hûn giran bikin.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

٦٣٧- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (يَسِّرُوا وَلَا تُعَسِّرُوا، وَبَشِّرُوا وَلَا تُنَفِّرُوا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

637-Ji Enes (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn hêsan bikin giran nekin û hûn mizgîniyê bidin nefretê nedinekirin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٣٨- وَعَنْ جَرِيرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ يُحْرَمِ الرِّفْقَ يُحْرَمِ الْخَيْرَ كُلَّهُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

638- Ji Cerîrê kurê ‘Ebdullah (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: “Kesê ku ji xweşxûtiyê bêpar be ji temamê xêran jî bêpar e.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٦٣٩- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَجُلاً قَالَ لِلنَّبِيِّ ﷺ: أَوْصِنِي قَالَ: (لَا تَغْضَبْ) فَرَدَّدَ مِرَاراً، قَالَ: (لَا تَغْضَبْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

639- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî ji Pêxemberê Xwedê (s.) re got: Tu şîretekê li min bike. Ewî (s.) got: “Tu nexeyîde.” Ewî mirovî çend caran dubare kir. (Her carê) Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Tu nexeyîde.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

٦٤٠- وَعَنْ أَبِي يَعْلَى شَدَّادِ بْنِ أَوْسٍ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّ اللَّهَ كَتَبَ الإِحْسَانَ عَلَى كُلِّ شَيءٍ، فَإِذَا قَتَلْتُمْ فَأَحْسِنُوا الْقِتْلَةَ، وَإِذَا ذَبَحْتُمْ فَأَحْسِنُوا الذِّبْحَةَ، وَلْيُحِدَّ أَحَدُكُم شَفْرَتَه، وَلْيُرِح ذَبِيحَتَهُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

640-Ji Ebû Ye‘la Şeddadê kurê Ews (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Xwedê te‘ala li ser her tiştî qencî û başî ferz kiriye. Vêca wextê îcab kir ku hûn bikujin kuştinên baş bikin, wextê we heywanek serjêkir serjêkirinê baş bikin. Yek ji we (wextê serjêkirinê) bila kêra xwe tûj bike û bila ezyetê nede heywanê.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٦٤١- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: مَا خُيِّرَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بَيْنَ أَمرَينِ قَطُّ إِلَّا أَخَذَ أَيْسَرَهُمَا، مَا لَم يَكُنْ إِثْماً، فَإِنْ كَانَ إِثْماً كَانَ أَبْعَدَ النَّاسِ مِنْهُ، وَمَا انتَقَمَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لِنَفْسِهِ فِي شَيءٍ قَطُّ، إِلَّا أَنْ تُنْتَهَكَ حُرْمَةُ اللَّهِ، فَيَنْتَقِمَ لِلَّهِ تَعَالَى. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

641- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) di bijartina yekî ji du tiştan de mecbûr bima, eger guneh nebûya miheqeq ya hêsanîtir hildijbart. Vêca eger guneh bûya ew (s.) ji hemû însanan çêtir jê dûr diket. Pêxemberê Xwedê (s.) tu carî ji bo tu tiştekî derbarê nefsa xwe de heyf nestandiye. Meger hurmeta Xwedê te'ala bihata şikênandin wî çaxî wî (s.) ji bona Xwedê heyf distand. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٤٢- وَعَنْ اِبْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: أَلَا أُخْبِرُكُمْ بِمَنْ يَحْرُمُ عَلَى النَّارِ؟ أَوْ بِمَنْ تَحْرُمُ عَلَيْهِ النَّارُ؟ تَحْرُمُ عَلَى كُلِّ قَرِيبٍ هَيِّنٍ لَيِّنٍ سَهْلٍ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

642- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ez we agahdar bikim ka kê li ser êgir heram e?" Yan jî got: "Ez we agahdar bikim ka agir li ser kê heram e? Agir li ser kesê xûngerm, hevrebor û rûnerm heram e." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

## بَابُ الْعَفْوِ وَالإِعْرَاضِ عَنِ الْجَاهِلِين

## BEXŞANDIN Û RÛBADANA JI NEZANAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿خُذِ الْعَفْوَ وَأْمُرْ بِالْعُرْفِ وَأَعْرِضْ عَنِ الجَاهِلِينَ﴾

"Aliyê hêsaniyê bigre, fermanê bi kar û kiryarê qenc bike û rûyê xwe ji nefêman vegerîne."[1]

﴿فَاصْفَحِ الصَّفْحَ الجَمِيلَ﴾

"Vêca tu li wan bibore; lêborîneke nerm û helîm."[2]

﴿وَلْيَعْفُوا وَلْيَصْفَحُوا أَلَا تُحِبُّونَ أَنْ يَغْفِرَ اللَّهُ لَكُمْ﴾

"Bila li wan biborin, çavê xwe ji wan bigrin û azad bikin. Qey hûn naxwazin ku Xwedê li we negre û gunehê we bibexşîne."[3]

﴿وَالْعَافِينَ عَنِ النَّاسِ وَاللهُ يُحِبُّ الْمُحْسِنِينَ﴾

1 E'raf, 7/199.
2 Hîcr, 15/85.
3 Nûr, 24/22.

"Kesê mirovan dibexşîne û Xwedê ji qencîkaran hez dike."[1]

﴿وَلَمَنْ صَبَرَ وَغَفَرَ إِنَّ ذَلِكَ لَمِنْ عَزْمِ الأُمُورِ﴾

"Ewê sebrê bikeşe û 'efû bike. Bêguman ev ji karê mezin in."[2]

٦٤٣- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ أَنَّهَا قَالَتْ لِلنَّبِيِّ ﷺ: هَلْ أَتَى عَلَيْكَ يَوْمٌ كَانَ أَشَدُّ مِنْ يَوْمِ أُحُدٍ؟ قَالَ: (لَقَدْ لَقِيتُ مِنْ قَوْمِكَ، وَكَانَ أَشَدَّ مَا لَقِيتُ مِنْهُمْ يَوْمَ العَقَبَةِ، إِذْ عَرَضْتُ نَفْسِي عَلَى اِبْنِ عَبْدِ يَالِيلَ بْنِ عَبْدِ كُلَالٍ، فَلَمْ يُجِبْنِي إِلَى مَا أَرَدْتُ، فَانْطَلَقْتُ وَأَنَا مَهْمُومٌ عَلَى وَجْهِي، فَلَمْ أَسْتَفِقْ إِلَّا وَأَنَا بِقَرْنِ الثَّعَالِبِ، فَرَفَعْتُ رَأْسِي، فَإِذَا أَنَا بِسَحَابَةٍ قَدْ أَظَلَّتْنِي، فَنَظَرْتُ فَإِذَا فِيهَا جِبْرِيلُ ﵇، فَنَادَانِي فَقَالَ: إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى قَدْ سَمِعَ قَوْلَ قَوْمِكَ لَكَ، وَمَا رَدُّوا عَلَيْكَ، وَقَدْ بعَثَ الله إِلَيكَ مَلَكَ الْجِبَالِ لِتَأْمُرَهُ بِمَا شِئْتَ فِيهِمْ، فَنَادَانِي مَلَكُ الْجِبَالِ، فَسَلَّمَ عَلَيَّ ثُمَّ قَالَ: يَا مُحَمَّدُ إِنَّ اللَّهَ قَدْ سَمِعَ قَوْلَ قَوْمِكَ لَكَ، وَأَنَا مَلَكُ الْجِبَالِ، وَقَدْ بَعَثَنِي رَبِّي إِلَيْكَ لِتَأْمُرَنِي بِأَمْرِكَ، فَمَا شِئْتَ؟ إِنْ شِئْتَ أَطْبَقْتُ عَلَيهِمُ الأَخْشَبَيْنِ، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: بَلْ أَرْجُو أَنْ يُخْرِجَ الله مِنْ أَصْلَابِهِمْ مَنْ يَعْبُدُ الله وَحْدَهُ لَا يُشْرِكُ بِهِ شَيْئاً). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

643- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku wê (r.) ji Pêxemberê Xwedê (s.) re got: Ma tu rojên ji roja Uhudê zortir li ser te re bihuriye? Ewî (s.) got: "Min ji qewmê te kişandiye. Zortirînê ezyetan ku min ji wan kişandiye roja 'Eqebê'[3] bû. Lewra min penahî ji kurê 'Ebdî Yalîlê kurê Kulal xwest, lê ewî daxwaza min qebûl nekir. Ez bi xemkêş rêve çûm û heta Qernes-Se'alibê[4] ez bi ser xwe ve nehatim. Vêca min serê xwe bilind kir û min lênihêrî ku ewrek min sîdar dike. Min berê xwe da wî 'ewrî min dît ku waye Cebraîl tê de ye. Gazî min kir û got: Bêguman Xwedayê te'ala gotina qewmê te derbarê te de û zivirandina wan daxwaziya te bihîst. Melekê çiyan ji te re şand, da ku tu tiştê bivê emrê wî bikî. Wê demê melekê çiyan gazî min kir, silav da min û paşê jî got: Ya Muhemmed! Bêguman Xweda gotina qewmê te ji te

1 Alî 'Îmran, 3/134.
2 Şu'era, 42/43.
3 **'Eqebe**: cihekî li cem bajarê Taîfê ye.
4 Mîqata ehlê Necdê ye li ser gotina sehîh. Ji Mekkeyê mesafa roj û şevekê ye û li rojhilata wê ye.

re bihîst. Ez melekê çiya me, Xwedê te'ala ez ji te re şandim da ku tu emrê xwe ji min re bêjî, ka te çi dive? Heger te bivê ezê 'Exşebanê[1] bi ser wan de wergerînim. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Nexêr, ez hêvîdar im ku Xwedê te'ala ji pişta wan hinek mirovên ku bes ji bo Xwedê îbadet bikin û tu hevbeşan jî jê re çênekin derxe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٤٤- وعَنْهَا قَالَتْ: مَا ضَرَبَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ شَيْئاً قَطُّ بِيَدِهِ، وَلَا إِمْرَأَةً وَلَا خَادِماً إِلَّا أَنْ يُجَاهِدَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ، وَمَا نِيلَ مِنْهُ شَيءٌ قَطُّ فَيَنْتَقِمَ مِنْ صَاحِبِهِ، إِلَّا أَنْ يُنْتَهَكَ شَيْءٌ مِنْ مَحَارِمِ اللَّهِ، فَيَنْتَقِمُ لِلهِ تَعَالَى. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

644- Dîsa ji wê (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji xeynê cîhada di rêya Xwedê de, ne jinik ne jî xulam bi destê xwe li tu tiştekî nedaye. Pêxemberê Xwedê (s.) tu car ji bo tiştekî ku zerar dabe nefsa wî heyf nestandiye. Meger hurmeta Xwedê te'ala bihata şikênandin wî çaxî wî (s.) ji bona Xwedê heyf distand. *Muslim rîwayet kiriye.*

٦٤٥- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: كُنْتُ أَمْشِي مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَعَلَيْهِ بُرْدٌ نَجْرَانِيّ غَلِيظُ الحَاشِيَةِ، فَأَدْرَكَهُ أَعْرَابِيّ، فَجَبَذَهُ بِرِدَائِهِ جَبْذَبةً شَدِيدَةً، فَنَظَرْتُ إِلَى صَفْحَةِ عَاتِقِ النَّبِيِّ وَقَدْ أَثَرَت بِهَا حَاشِيَةُ الرِّدَاءِ مِنْ شِدَّةِ جَبْذَتِهِ، ثُمَّ قَالَ: يَا مُحَمَّدُ مُرْ لِي مِنْ مَالِ اللَّهِ الَّذِي عِنْدَكَ، فَالْتَفَتَ إِلَيْهِ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَضَحِكَ، ثُمَّ أَمَرَ لَهُ بِعَطَاءٍ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

645- Ji Enes (r.), got: Ez digel Pêxemberê Xwedê (s.) bi rê ve diçûm. Li ser wî (s.) jî kurkekî Necranî hebû ku kêlekên wî stûr bûn. Vêca mirovekî bedewî gihîşte wî (s.) û kurkê wî bi awayekî qewî kişand. Rawî dibêje: Min berê xwe da stûyê Pêxemberê Xwedê (s.) min dît ji ber şiddeta wê kişandinê dewsa kêleka wî kurkî tê de kifş dikir. Paşê ewî merivî got: Ya Muhemmed! Ji malê Xwedê, yê li cem te hinekî bide min. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) berê xwe dayê, keniya û paşê ji bo wî emrê dayinê kir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٤٦- وَعَنِ إِبْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: كَأَنِّي أَنْظُرُ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ يَحْكِي نَبِيّاً مِنَ الأَنْبِيَاءِ صَلَوَاتُ الله وَسَلَامُهُ عَلَيهِمْ، ضَرَبَهُ قَوْمُهُ فَأَدْمَوهُ، وَهُوَ يَمْسَحُ الدَّمَ عَنْ وَجْهِهِ، وَيَقُولُ:

1 **'Exşeban:** Du çiyayên mezin in ku li dora Mekkeyê girtine.

اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِقَوْمِي فَإِنَّهُم لاَ يَعْلَمُونَ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

646- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Wekî ku niha ez li Pêxemberê Xwedê (s.) meyze dikim behsa pêxemberekî (s.) wilo dikir: Qewmê wî li wî dabûn û xûn kiribûn (birîndar kiribûn) û ew jî xûnê ji serçavê xwe paqij dike û dibêje: Xwedayo! Tu qewmê min bibexşînî, lewra ew nezan in. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٤٧- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَيْسَ الشَّدِيدُ بِالصُّرْعَةِ، إِنَّمَا الشَّدِيدُ الَّذِي يَمْلِكُ نَفْسَهُ عِنْدَ الْغَضَبِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

647- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mirovê bi hêz û quwet ne ewê di gulaşê de şahreza ye. Bes kesê bi hêz û quwet ew e ku di dema 'enirandinê de bi xwe bikaribe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ إِحْتِمَالِ الأَذَى
## TEYAXA TADEYIYÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَالكَاظِمِينَ الْغَيْظَ وَالْعَافِينَ عَنِ النَّاسِ وَاللهُ يُحِبُّ الْمُحْسِنِينَ﴾

"Û kerba xwe vedişêrin (di kerban de sîtemê li kesî nakin) û xelkê azad dikin. Xwedê ji qencîkaran hez dike."[1]

﴿وَلَمَنْ صَبَرَ وَغَفَرَ إِنَّ ذَلِكَ لَمِنْ عَزْمِ الأُمُورِ﴾

"Ewê sebrê bikeşe û efû bike. Bêguman ev ji karê mezin in."[2]

٦٤٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَجُلاً قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنَّ لِي قَرَابَةً أَصِلُهُمْ وَيَقْطَعُونِي، وَأُحْسِنُ إِلَيْهِمْ وَيُسِيئُونَ إِلَيَّ، وَأَحْلُمُ عَنْهُم وَيَجْهَلُونَ عَلَيَّ، فَقَالَ: (لَئِنْ كُنْتَ كَمَا قُلْتَ فَكَأَنَّمَا تُسِفُّهُمُ الْمَلَّ، وَلَا يَزَالُ مَعَكَ مِنَ اللَّهِ تَعَالَى ظَهِيرٌ عَلَيْهِمْ مَا دُمْتَ عَلَى ذَلِكَ) رَوَاهُ مُسْلِم.

648- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku miroveki got: Ya

1 Alî 'Îmran, 3/134.
2 Şura, 42/43.

Pêxemberê Xwedê! Hinek eqrebayên min hene; ez seriyan li wan didim lê ew li min napirsin, ez qenciyê li wan dikim, lê ew xerabiyê li min dikin û ez bi wan re bêdeng im, lê ew ji min re bêrêz û xerab in. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Heger tu wekî vê gotina xwe bî her wekî te xweliya germ daye wan û hingî tu li ser vê rewşê bidomînî wê Xwedê li hemberî wan heval û arîkarê te be." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ الْغَضَبِ إِذَا انْتُهِكَتْ حُرُمَاتُ الشَّرْعِ

## HÊRSBÛNA WEXTÊ PÊPESKIRINA EMRÊ XWEDÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَمَنْ يُعَظِّمْ حُرُمَاتِ اللَّهِ فَهُوَ خَيْرٌ لَهُ عِنْدَ رَبِّهِ﴾

"Her kesê tiştên Xwedê heram kirî mezin bike, –yanî qanûna Xwedê îhlal neke, bêrêziyê neke– ew hal li cem Rebbê wî ji wî re qenctir e."[1]

﴿إِنْ تَنْصُرُوا اللَّهَ يَنْصُرْكُمْ وَيُثَبِّتْ أَقْدَامَكُمْ﴾

"Eger hûn arîkariya Xwedê bikin wê Xwedê jî arîkariya we bike û dê lingên we sabit bihêle."[2]

٦٤٩- وَعَنْ أَبِي مَسْعُود عُقْبَةَ بْنِ عَمْرِو الْبَدْرِيِّ ﷺ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ: إِنِّي لَأَتَأَخَّرُ عَنْ صَلَاةِ الصُّبْحِ مِنْ أَجْلِ فُلَانٍ مِمَّا يُطِيلُ بِنَا، فَمَا رَأَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ غَضِبَ فِي مَوْعِظَةٍ أَشَدَّ مِمَّا غَضِبَ يَوْمَئِذٍ، فَقَالَ: (يَا أَيُّهَا النَّاسُ: إِنَّ مِنْكُم مُنَفِّرِين، فَأَيُّكُم أَمَّ النَّاسَ فَلْيُوجِزْ فَإِنَّ مِنْ وَرَائِهِ الْكَبِيرَ وَالصَّغِيرَ وَذَا الْحَاجَةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

649- Ji Ebû Mes'ûd 'Uqbeyê kurê 'Emrê Bedrî (r.), got: Mirovek hate cem Pêxember (s.) û got: Ji ber ku filan kes nimêjê dirêj dike, ez ji nimêja sibehê li paş dimînim. Rawî dibêje: Min Pêxember (s.) di tu we'zan de wekî wê rojê bi hêrs nedîtibû. Û ewî (s.) got: "Gelî mirovan! Ji we hinek însanan didin kerixandin. Kî ji we îmamiya însanan bike bila nimêjê kurt bike; lewra li pey wî, mirovên kal, piçûk û xwedankar hene." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

---

1 Hec, 22/30.

2 Muhemmed, 47/7.

٦٥٠- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: قَدِمَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فِي سَفَرٍ، وَقَدْ سَتَرْتُ سَهْوَةً لِي بِقِرَامٍ فِيهِ تَمَاثِيلُ، فَلَمَّا رَآهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ هَتَكَهُ وَتَلَوَّنَ وَجْهُهُ، وَقَالَ: (يَا عَائِشَةَ: أَشَدُّ النَّاسِ عَذَاباً عِنْدَ اللَّهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ الَّذِينَ يُضَاهُونَ بِخَلْقِ اللَّهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

650- Ji ‘Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji seferekê zivirîbû, min jî pêşiya malê bi perdeka ku tê de resim hebû nixumandibû. Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) ew perde dît ew dirand, rengê wî çû û got: "‘Aîşe, kesê roja qiyametê li cem Xwedê te‘ala ‘ezabê wî şedîdtir ewê ku di babeta afirandinê de xwe dişibîne Xwedê te‘ala ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٥١- وعَنْهَا أَنَّ قرَيْشاً أَهَمَّهُمْ شَأْنُ الْمَرأَةِ الْمَخْزُومِيَةِ الَّتِي سَرَقَتْ فَقَالُوا: مَنْ يُكَلِّمُ فِيهَا رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَقَالُوا: مَنْ يَجْتَرِىءُ عَلَيْهِ إِلَّا أُسَامَةُ بْنُ زَيْدٍ حِبُّ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَكَلَّمَهُ أُسَامَةُ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: أَتَشْفَعُ فِي حَدٍّ مِنْ حُدُودِ اللَّهِ؟) ثُمَّ قامَ فَاخْتَطَبَ ثُمَّ قَالَ: (إِنَّمَا أَهْلَكَ الَّذِينَ مِنْ قَبْلَكُمْ أَنَّهُمْ كَانُوا إِذَا سَرَقَ فِيهِمُ الشَّرِيفُ تَرَكُوهُ، وإِذَا سَرَقَ فِيهِم الضَّعِيْفُ أَقَامُوا عَلَيْهِ الْحَدَّ، وَأَيْمُ اللَّهِ لَوْ أَنَّ فَاطِمَةَ بِنْتَ مُحَمَّدٍ سَرَقَتْ لَقَطَعْتُ يَدَهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

651-Dîsa ji wê (r.) hatiye rîwayetkirin ku rewşa jineka Mexzûmî ya ku (roja fetha Mekkeyê) dizî kiribû li êla Qureyşiyan giran hat. Vêca wan gotin: Kî wê derbarê wê de bi Pêxemberê Xwedê (s.) re biaxive? Di navbera xwe de gotin: Kes newêre evê yekê ji Pêxember (s.) re bêje ji xeynê Usameyê kurê Zeydê ku Pêxemberê Xwedê (s.) pir jê hez dike. Vêca Usame bi Pêxemberê Xwedê (s.) re axivî. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Tu ji bo ketina cezayek ji cezayê Xwedê te‘ala mehderê dikî?" Paşê rabû axaftin kir û got: Bes yê ku li pêşiya we derbas bûne çûne helakê bi sedem ku; wextê di nav wan de yekî giregir dizî bikira ew berdidan û wextê yekî belengaz û jar dizî bikira ew ceza dikirin. Bi sond, eger Fatimeya keça Muhemmed jî diziyê bike ezê destê wê jêbikim. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٥٢- وَعَنْ أَنَسٍ ﵁ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ رَأَى نُخَامَةً فِي الْقِبلَةِ، فَشَقَّ ذَلِكَ عَلَيْهِ حَتَّى رُؤِيَ فِي وَجْهِهِ، فَقَامَ فَحَكَّهُ بِيَدِهِ فَقَالَ: (إِنَّ أَحَدَكُمْ إِذَا قَامَ فِي صَلَاتِهِ فَإِنَّهُ يُنَاجِي رَبَّهُ، وَإِنَّ رَبَّهُ

بِيْنَهُ وَبَينَ الْقِبْلَةِ، فَلَا يَبْزُقَنَّ أَحَدُكُم قِبَلَ الْقِبْلَةِ، وَلَكِنْ عَنْ يَسَارِهِ، أَوْ تَحْتَ قَدَمِهِ) ثُمَّ أَخَذَ طَرَفَ رِدَائِهِ فَبَصَقَ فِيهِ، ثُمَّ رَدَّ بَعْضَهُ عَلَى بَعْضٍ، فَقَالَ: (أَوْ يَفْعَلُ هكَذَا). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

652- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) di qibla mizgeftê de tif dît. Ev yek lê nexweş hat, heta eva di rûyê wî (s.) de jî xuya bû. Vêca rabû bi destê xwe ewa xeritand/darot, avêt û got: "Bêguman yek ji we wextê radibe li ser nimêjê, bi Rebbê xwe re munacatê dike (di hizûra wî de ye). Û Rebbê wî jî di navbera wî û qiblê de ye. Ji bo vê bila tu kes ji we aliyê qibleyê tif neke. Lê bila tif aliyê çepê bike yan bin piyê xwe." Paşê wî (s.) kêlekeke kurkê xwe girt, tif kirê, paşê ew tevda û got: "Yan jî bila wiha bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ أَمْرِ وُلَاةِ الأُمُورِ بِالرِّفْقِ بِرَعَايَاهُمْ وَنَصِيحَتِهِمْ
## KIRARÊ KARGERA BI KARDARA RE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَاخْفِضْ جَنَاحَكَ لِمَنْ اتَّبَعَكَ مِنَ الْمُؤْمِنِينَ﴾

"Tu, baskê xwe deyne bo wan mu'minên ku bûne peyrewên te."[1]

﴿إِنَّ اللَّهَ يَأْمُرُ بِالْعَدْلِ وَالإِحْسَانِ وَإِيتَاءِ ذِى الْقُرْبَى وَيَنْهَى عَنِ الْفَحْشَاءِ وَالْمُنْكَرِ وَالْبَغْيِ يَعِظُكُمْ لَعَلَّكُمْ تَذَكَّرُونَ﴾

"Bi rastî Xweda; emrê bi edaletê, başiyê û arîkariya eqrebayan dike. Û nehyê ji hemû gunehên kirêt û kiryarên xerab û zulm dike. Xweda van şîretan li we dike, da ku hûn bifikirin."[2]

٦٥٣- وَعَنْ اِبْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: كُلُّكُمْ رَاعٍ، وَكُلُّكُمْ مَسْؤُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ: الإِمَامُ رَاعٍ وَمَسْؤُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، وَالرَّجُلُ رَاعٍ فِي أَهْلِهِ وَمَسؤُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، وَالْمَرْأَةُ رَاعِيَةٌ فِي بَيْتِ زَوْجِهَا وَمَسؤُولَةٌ عَنْ رَعِيَّتِهَا، وَالخَادِمُ رَاعٍ فِي مَالِ سَيِّدِهِ وَمَسؤُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، وَكُلُّكُم رَاعٍ وَمَسؤُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1 Şu'era, 26/215.
2 Nehl, 16/90.

653- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: "Hûn hemû şivan in û hûn ji keriyê xwe berpirsiyar in. Siltan şivan e û ji keriyê xwe berpirsiyar e, mêr di nav mala xwe de şivan e û ji keriyê xwe berpirsiyar e, jin di mala mêrê xwe de şivan e û ji keriyê xwe berpirsiyar e, xulam di malê malxoyê xwe de şivan e û ji keriyê xwe berpirsiyar e û hûn hemû şivan in û hûn ji keriyê xwe berpirsiyar in." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٥٤- وَعَنْ أَبِي يَعْلَى مَعْقِلِ بْنِ يَسَارٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَا مِنْ عَبْدٍ يَسْتَرْعِيهِ اللَّهُ رَعِيَّةً يَمُوتُ يَوْمَ يَمُوتُ وَهُوَ غَاشٌّ لِرَعِيَّتِهِ، إِلَّا حَرَّمَ اللَّهُ عَلَيْهِ الْجَنَّةَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: (فَلَمْ يَحُطْهَا بِنُصْحِهِ لَمْ يَجِدْ رَائِحَةَ الْجَنَّةِ).

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِم: (مَا مِنْ أَمِيرٍ يَلِي أُمُورَ الْمُسْلِمِينَ، ثُمَّ لَا يَجْهَدُ لَهُمْ، وَيَنْصَحُ لَهُمْ إِلَّا لَمْ يَدْخُل مَعَهُمُ الْجَنَّةَ).

654- Ji Ebû Ye'la Me'qîlyê kurê Yesar (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: "Kesê ku Xwedê qewmekî bixe bin destê wî û ew jî xiyanetê bi wan re bike û di wî halî de jî bimre, dê Xwedê te'ala cennetê li wî heram bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetekê de: Ew, wî qewmî bi rêberiya xwe raçav neke bêhna cennetê nabîne.

Di rîwayeteke Muslim de: Mîrê ku kargeriya misilmanan hildabe ser xwe, paşê ji wan re tu xebat û rêberî nekiribe digel wan misilmanan tu car naçe cennetê.

٦٥٥- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ فِي بَيْتِي هَذَا: (اللَّهُمَّ مَنْ وَلِيَ مِنْ أَمْرِ أُمَّتِي شَيْئاً، فَشَقَّ عَلَيْهِمْ، فَاشقُق عَلَيْهِ، وَمَنْ وَلِيَ مِنْ أَمْرِ أُمَّتِي شَيْئاً، فَرَفَقَ بِهِمْ، فَارْفُق بِهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

655- Ji 'Aîşe (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, di vê mala min de wiha digot: "Xweda! Kesê ku ji kargeriya ummeta min erkekê hilde ser xwe vêca ji wan re tengasiyê çêbike tu jî wî bixî tengasiyê. Û kesê ku ji kargeriya ummeta min erkekê hilde ser xwe, vêca bi wan re bi nermî muamele bike, tu jî ji wî re bi nermî muamele bike." *Muslim rîwayet kiriye.*

٦٥٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: كَانَتْ بَنُو إِسْرَائِيلَ تَسُوسُهُمُ الأَنْبِيَاءُ، كُلَّمَا هَلَكَ نَبِيٌّ خَلَفَهُ نَبِيٌّ، وَإِنَّهُ لَا نَبِيَّ بَعْدِي، وَسَيَكُونُ بَعْدِي خُلَفَاءُ فَيَكْثُرُونَ) قَالُوا: يَا رَسُولَ الله فَمَا تَأْمُرُنَا؟ قَالَ: (أوفُوا بِبَيْعَةِ الأَوَّلِ فَالأَوَّل، ثُمَّ أَعْطُوهُم حَقَّهُم، وَاسْأَلُوا اللَّهَ الَّذِي لَكُمْ، فَإِنَّ اللَّهَ سَائِلُهُمْ عَمَّا اسْتَرْعَاهُمْ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

656- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Kargerî û rêberiya êla Benî Îsraîliyan di destê pêxemberan de bû, çi wextê pêxemberekî wefat bikira yekî din diket ciyê wî. Bêguman piştî min tu pêxember êdî nayên, bes piştî min xelîfeyên werin û yê zehf bin jî." Eshaba gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu çi emrê me dikî? Ewî (s.) got: "Bi rêzê ve hûn bî'eta wan bikin, paşê hûn heqê wan bidine wan û hûn heqê xwe yê ku li ser wan e ji Xwedê bixwazin. Lewra bêguman Xweda te'ala wê ewan berpirsiyar bike, ji huqûqê we yê li ser wan ka bi cî anîne yan na." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٦٥٧- وَعَنْ عَائِذِ بْنِ عَمْرٍو ﷺ أَنَّه دَخَلَ عَلَى عُبَيْدِ اللَّهِ بْنِ زِيَادٍ، فَقَالَ لَهُ: أَيْ بُنَيَّ، إِنِّي سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ شَرَّ الرِّعَاءِ الْحُطَمَةُ) فَإِيَّاكَ أَنْ تَكُونَ مِنْهُمْ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

657- Ji 'Aizê kurê 'Emr (r.) hatiye rîwayetkirin ku ew çû cem 'Ebdullahê kurê Ziyad û jê re got: Kurê min! Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: "Bêguman xerabtirînê serekan ew e, yê ku dilhişk û zalim e. Vêca tu xwe biparêze ku tu bibî ji wan." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٥٨- وَعَنْ أَبِي مَرْيَمَ الأَزْدِيِّ ﷺ أَنَّهُ قَالَ لِمُعَاوِيَةَ ﷺ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ وَلَّاهُ اللَّهُ شَيْئاً مِنْ أُمُورِ الْمُسْلِمِينَ، فَاحْتَجَبَ دُونَ حَاجَتِهِم وَخَلَّتِهِم وَفَقْرِهِم، احْتَجَبَ الله دُونَ حَاجَتِه وَخَلَّتِهِ وَفَقْرِهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ) فَجَعَلَ مُعَاوِيَةُ رَجُلاً عَلَى حَوَائِجِ النَّاسِ. رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي.

658- Ji Ebû Meryemê Ezdî (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Mu'awiye re got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Kesê ku ji kargeriya misilmana erkekê hilde ser xwe vêca ew deriyê xwe ji ber hewce, daxwaz

û jariya wan bigre Xwedê te'ala jî roja qiyametê derê xwe ji ber hewce, daxwaz û jariya wî dê bigre." Li ser vê yekê Mu'awiye mirovek tayîn kir ji bo pêkanîna hewceyê misilmanan. *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine.*

## بَابُ الْوَلِي الْعَادِل
## SERWERÊ DADMEND

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿إِنَّ اللَّهَ يَأْمُرُ بِالْعَدْلِ وَالإِحْسَانِ﴾

"Bêguman Xweda, emrê bi edalet û qenciyê dike."[1]

﴿وَأَقْسِطُوا إِنَّ اللَّهَ يُحِبُّ الْمُقْسِطِينَ﴾

"Vêca edaletê bikin, bêguman Xweda ji edaletdaran hez dike."[2]

٦٥٩- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (سَبْعَةٌ يُظِلُّهُمُ اللَّهُ فِي ظِلِّهِ يَوْمَ لَا ظِلَّ إِلَّا ظِلُّهُ: إِمَامٌ عَادِلٌ، وَشَابٌّ نَشَأَ فِي عِبَادَةِ اللَّهِ تَعَالَى، وَرَجُلٌ قَلْبُهُ مُعَلَّقٌ فِي الْمَسَاجِدِ، وَرَجُلَانِ تَحَابَّا فِي اللَّهِ، اجْتَمَعَا عَلَيْهِ، وَتَفَرَّقَا عَلَيْهِ، وَرَجُلٌ دَعَتْهُ امْرَأَةٌ ذَاتُ مَنْصِبٍ وَجَمَالٍ، فَقَالَ: إِنِّي أَخَافُ اللَّهَ، وَرَجُلٌ تَصَدَّقَ بِصَدَقَةٍ، فَأَخْفَاهَا حَتَّى لَا تَعْلَمَ شِمَالُهُ مَا تُنْفِقُ يَمِينُهُ، وَرَجُلٌ ذَكَرَ اللَّهَ خَالِياً فَفَاضَتْ عَيْنَاهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

659- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Heft cûre mirov hene Xwedê te'ala wan li bin siya xwe de sî dike rojeke ku ji xeynê siya wî tu sî tune: Serokê dadmend, xortê ku bi îbadetê Xwedê gihaştiye, mirovê ku dilê wî bi mizgefta ve girêdayî ye, du mirovên ku ji bo Xwedê hevdu hez dikin ji bo wî kom dibin û ji bo wî ji hevdu diqetin, mirovê ku jinikeke xweyî cah û rindayî ewî gazî bal xwe dike, lê ew dibêje: Ez ji Xwedê ditirsim, mirovê ku wisa dizîva sedeqe dide çepê wî nizane ka rastê wî çi mezixandiye û yek jî ew mirovê ku di tenêtiyê de Xwedê bi bîr tîne û her du çavê wî hêstira dirêjîne." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 Nehl, 16/90.
2 Hucurat, 49/9.

٦٦٠- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: إِنَّ الْمُقْسِطِينَ عِنْدَ الله عَلَى مَنَابِرَ مِنْ نُورٍ الَّذِينَ يَعْدِلُونَ فِي حُكْمِهِمْ وَأَهْلِيهِمْ وَمَا وَلُوا). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

660- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman mirovên dadmend cem Xwedê te'ala li ser mînberê ji nûrê ne: Ewê ku di hukmê xwe û di derbarê ehlê mala xwe û di erka xwe de dadmendiyê dikin." *Muslim rîwayet kiriye.*

٦٦١- وَعَنْ عَوْف بْنِ مَالِكٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (خِيَارُ أَئِمَّتِكُمُ الَّذِينَ تُحِبُّونَهُمْ وَيُحِبُّونَكُمْ، وَتُصَلُّونَ عَلَيْهِمْ وَيُصَلُّونَ عَلَيْكُمْ، وَشِرَارُ أَئِمَّتِكُمُ الَّذِينَ تُبْغِضُونَهُمْ ويُبْغِضُونَكُمْ، وتَلْعَنُونَهُمْ ويَلْعَنُونَكُمْ) قَالَ: قُلْنَا يَا رَسُولَ الله، أَفَلَا نُنَابِذُهُمْ؟ قَالَ: لَا، مَا أَقَامُوا فِيكُمُ الصَّلَاةَ، مَا أَقَامُوا فِيكُمُ الصَّلاةَ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

661- Ji 'Ewfê kurê Malik (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: "Qenctirînê serokê we ew in ku hûn ji wan hez dikin û ew jî ji we hez dikin, hûn ji wan re dua dikin û ew jî ji we re dua dikin. Xerabtirînê serokên we ew in, ku hûn ji wan dikerixin û ew jî ji we dikerixin, hûn lanetê li wan dibarînin û ew jî lanetê li we dibarînin." Rawî dibêje: Me got: Ya Pêxemberê Xwedê! Qey em peywendiya xwe ji wan nebirrin? Ewî (s.) got: "Naxêr, ta ku ew di nav we de nimêjê bikin. Naxêr, ta ku ew di nav we de nimêjê bikin." *Muslim rîwayet kiriye.*

٦٦٢- وَعَنْ عِيَاض بْنِ حِمَارٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (أَهْلُ الْجَنَّةِ ثَلاثَةٌ: ذُو سُلْطَانٍ مُقْسِطٌ مُوَفَّقٌ، وَرَجُلٌ رَحِيمٌ رَقِيقُ الْقَلْبِ لِكُلِّ ذِي قُرْبَى وَمُسْلِمٍ، وَعَفِيفٌ مُتَعَفِّفٌ ذُو عِيَالٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

662- Ji 'Iyazê kurê Hîmar (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Ehlê cennetê sê ne: Serokdewletê dadmend û serfêraz, mirovê ku ji hemû eqrebayên xwe û misilmanan re dilovan û dilnerm e û yek jî ew mirovê ku xwedanzar û zêç e lê destdirêjaya malê heram nake û şermoke ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

  

## بَابُ وُجُوبِ طَاعَةِ وُلَاةِ الأَمْرِ فِي غَيْرِ مَعْصِيَةٍ

## WACIBBÛNA FERMANBERIYA/ÎTA'ETA SERWERÎ DI XEYNÊ GUNEHAN DE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا أَطِيعُوا اللَّهَ وَأَطِيعُوا الرَّسُولَ وَأُولِي الأَمْرِ مِنْكُمْ﴾

"Gelî ewên bawerî anîne, guhdariya Xwedê, pêxember û serwerê ji xwe bikin."[1]

٦٦٣- وَعَنْ إِبْنِ عُمَرَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (عَلَى الْمَرْءِ الْمُسْلِمِ السَّمْعُ وَالطَّاعَةُ فِيمَا أَحَبَّ وَكَرِهَ، إِلَّا أَنْ يُؤْمَرَ بِمَعْصِيَةٍ، فَإِذَا أُمِرَ بِمَعْصِيَةٍ فَلَا سَمْعَ وَلَا طَاعَةَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

663- Ji Îbnu 'Umer (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Heta ku neyê emirkirin bi kirina gunehan, wacib e li ser mirovê misilman guhdarî û fermanberî di tiştê ku jê hez dike û jê hez neke. Heger were emirkirin bi kirina gunehan, guhdarî û fermanberî jê re tuneye." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٦٦٤- وَعَنْهُ قَالَ: كُنَّا إِذَا بَايَعْنَا رَسُولَ اللَّهِ ﷺ عَلَى السَّمْعِ والطَّاعَةِ يَقُولُ لَنَا: (فِيمَا اسْتَطَعْتُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

664- Dîsa ji wî (r.), got: Wextê me bi Pêxemberê Xwedê (s.) re li ser guhdarî û fermanberiyê bey'et kir, ewî (s.) ji me re got: "Guhdarî û fermanberiyê di tiştê ku hûn dikarin de bikin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٦٥- وَعَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ خَلَعَ يَداً مِنْ طَاعَةٍ لَقِيَ الله يَوْمَ الْقِيَامَةِ وَلَا حُجَّةَ لَهُ، وَمَنْ مَاتَ وَلَيْسَ فِي عُنُقِهِ بَيْعَةٌ مَاتَ مِيتَةً جَاهِلِيَّةً). رَوَاهُ مُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: (وَمَنْ مَاتَ وَهُوَ مُفَارِقٌ لِلْجَمَاعَةِ، فَإِنَّهُ يَمُوتُ مِيتَةً جَاهِلِيَّةً.

665- Dîsa ji wî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: Kesê destê xwe ji fermanberiyê bikşîne wê roja qiyametê bêdelîl rastî Xwedê were. Çi kesê bê bey'et bimire ew bi mirinek cahilî dimire."

1 Nîsa, 4/59.

Di rîwayetekê de: Kesê ji cema‘etê veqetiyayî bimire ew bi mirinek cahilî dimire."

٦٦٦- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَسْمَعُوا وأَطِيعُوا، وَإِنِ اسْتُعْمِلَ عَلَيْكُمْ عَبْدٌ حَبَشِيّ، كَأَنَّ رَأْسَهُ زَبِيبَةٌ). رَوَاهُ البُخَارِي.

666- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn guhdarî û fermanberî bikin, her çiqas kolekî Hebeşî ku serê wî wekî mewîjê ye bibe serwerê we jî." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٦٦٧- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (عَلَيْكَ السَّمْعَ وَالطَّاعَةُ فِي عُسْرِكَ وَيُسْرِكَ، وَمَنْشَطِكَ وَمَكْرَهِكَ وَأَثَرَةٍ عَلَيْكَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

667- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Pêwist e ku tu di tengasî û firehaya xwe, di dilşahî û xemgîniya xwe û di çêtir dîtina xeynê li ser xwe de guhdarî û fermanberiyê bikî." *Muslim rîwayet kiriye.*

٦٦٨- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرو ﷺ قَالَ: كُنَّا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي سَفَرٍ، فَنَزَلْنَا مَنْزِلاً، فَمِنَّا مَنْ يُصْلِحُ خِبَاءَه، وَمِنا مَنْ يَنْتَضِلُ، وَمِنَّا مَنْ هُوَ فِي جَشَرِه إِذْ نَادَى مُنَادِي رَسُولِ اللَّهِ ﷺ: الصَّلاةُ جَامِعَةً، فَاجْتَمَعْنَا إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: (إِنَّهُ لَمْ يَكُنْ نَبِيٌّ قَبْلِي إِلَّا كَانَ حَقّاً عَلَيْهِ أَنْ يَدُلَّ أُمَّتَهُ عَلَى خَيْرِ مَا يَعْلَمُهُ لَهُمْ، وَيُنْذِرهُمْ شَرَّ مَا يَعْلَمُه لَهُمْ، وَإِنَّ أُمَّتَكُمْ هَذِهِ جُعِلَ عَافِيَتُهَا فِي أَوَّلِهَا، وَسَيُصِيبُ آخرَهَا بَلاءٌ وَأُمُورٌ تُنكِرُونَهَا، وَتَجِيءُ فِتَنٌ يُرقِّقُ بَعْضُهَا بَعْضاً، وَتَجِيءُ الْفِتْنَةُ فَيَقُولُ الْمُؤْمِنُ: هَذِهِ مُهْلِكَتِي، ثُمَّ تَنكَشِفُ، وتَجِيءُ الْفِتْنَةُ فَيَقُولُ الْمُؤْمِنُ: هَذِهِ هَذِهِ، فَمَنْ أَحَبَّ أَنْ يُزَحْزَحَ عَنِ النَّارِ، وَيُدْخَلَ الْجَنَّةَ، فَلتَأْتِهِ مَنِيَّتُهُ وَهُوَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ واليَوْمِ الآخِرِ، وَلْيَأْتِ إِلَى النَّاسِ الَّذِي يُحِبُّ أَنْ يُؤتى إِلَيْهِ، وَمَنْ بَايَعَ إِمَاماً فَأَعْطَاهُ صَفْقَةَ يَدِهِ، وَثَمرةَ قَلْبِهِ، فَلْيُطِعْهُ إِنِ اسْتَطَاعَ، فَإِنْ جَاءَ آخَرُ يُنَازِعُهُ، فَاضرِبُوا عُنُقَ الآخَرِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

668- Ji ‘Ebdullahê Îbnu ‘Umer (r.), got: Em di rêwîtiyekê de digel Pêxemberê Xwedê (s.) bûn. Vêca em berjêrî cîhekî bûn. Kê ji me konê xwe çêdikir, kê ji me xwe hînî tîravêtinê dikir, kê ji me jî di nav garana dewaran de bû. Di wê demê de mu’ezzinê Pêxemberê Xwedê (s.) gazî kir: ‘Wextê nimêjê hat.’ Vêca em cem Pêxemberê Xwedê (s.) kom bûn. Ewî (s.) got: “Her Pêxemberê beriya min çi tiştê zanîne ku qenc e ji bo ummeta wan ji wan re gotine û tiştê ku zanîne xerab e, ew ji wê jî tirsandine. Ummeta we eva hanê başiya wê di destpêka wê de ye, domayîka wê de bela û tiştên sik wê çêbibin û wê fitneyên wisa derkevin ku fitna pêşî ji fitna paşê hêsantir be. Wê fitneyek were muminê bêje: Ezê ji ber vê helak bibim. Paşê wextê ew fitne belav bibe û fitneyek din were, mumin dê dîsa bêje: Aha eva ye, aha eva ye. Vêca kesê bixwaze ku ji agir bê dûrkirin û here cennetê, bila di gava mirina xwe de baweriya wî bi Xwedê û roja axîretê hebe. Û bila tiştê ku dixwaze jê re bê dayin, bide însanan. Kê bî‘atê bi serokdewlet re bike bila kefa destê xwe û dilsoziya dilê xwe bidiyê û heta dikare bila fermanberiya wî bike. Heger yekî din hat û bi wî re têkoşîn kir hûn li serê yê dawiyê bidin.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٦٦٩- وَعَنْ أَبِي هُنَيْدَةَ وَائِلِ بْنِ حُجْرٍ ﷺ قَالَ: سَأَلَ سَلَمَةُ بْنُ يَزِيدَ الْجُعْفِيُّ رَسُولَ اللهِ ﷺ فَقَالَ: يَا نَبِيَّ اللهِ، أَرَأَيْتَ إِنْ قَامَتْ عَلَيْنَا أُمَرَاءُ يَسْأَلُونَا حَقَّهُمْ، وَيَمْنَعُونَا حَقَّنَا، فَمَا تَأْمُرُنَا؟ فَأَعْرَضَ عَنْهُ، ثُمَّ سَأَلَهُ فَقَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (اسْمَعُوا وَأَطِيعُوا، فَإِنَّمَا عَلَيْهِمْ مَا حُمِّلُوا، وَعَلَيْكُمْ مَا حُمِّلْتُمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

669- Ji Ebû Hûneyde Wa’ilê kurê Hucr (r.), got: Selemeyê kurê Yezîdê Cu‘fî ji Pêxemberê Xwedê (s.) pirsî û got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ka tu çawa dibînî, eger ji me re hinek serwer rabin mafê xwe ji me bixwazin û men‘a mafê me jî bikin nedin, tu çi emrê me dikî? Pêxemberê Xwedê (s.) berê xwe jê vegerand. Dîsa ewî pirsiyara xwe tekrar kir. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Hûn guhdarî û fermanberî bikin. Bêguman ew ji erka xwe berpirsiyar in û hûn jî ji erka xwe.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٦٧٠- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّهَا سَتَكُونُ بَعْدِي أَثَرَةٌ، وَأُمُورٌ تُنْكِرُونَهَا) قَالُوا: يَا رَسُولَ اللهِ، كَيْفَ تَأْمُرُ مَنْ أَدْرَكَ مِنَّا ذَلِكَ؟ قَالَ: (تُؤَدُّونَ

الْحَقَّ الَّذِي عَلَيْكُمْ، وَتَسْأَلُونَ اللَّهَ الَّذِي لَكُمْ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

670- Ji 'Ebdullahê kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Miheqeq piştî min hinek tiştê bêrê/nerind wê çêbin." Sehabiyan gotin: Ya Pêxemberê Xwedê (s.)! Tu çi emrê wî kesê ku ji me ewê bibîne dikî? Ewî (s.) got: "Hûnê heqê li ser xwe pêk bînin û hûnê daxwaza pêkanîna heqê xwe jî ji Xwedê bikin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٧١- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ أَطَاعَنِي فَقَدْ أَطَاعَ اللَّهَ، وَمَنْ عَصَانِي فَقَدْ عَصَى اللَّهَ، وَمَنْ يُطِعِ الأَمِيرَ فَقَدْ أَطَاعَنِي، وَمَنْ يَعْصِ الأَمِيرَ فَقَدْ عَصَانِي).

رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

671- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî fermanberiya min bike her wekî fermanberiya Xwedê kiriye, kî li hember min asê be her wekî li hember Xwedê asê ye, kî fermanberiya serwer/emîr bike her wekî fermanberiya min kiriye û kî li hember serwer asê be her wekî li hember min asê ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٧٢- وَعَنْ اِبْنِ عَبَّاسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ كَرِهَ مِنْ أَمِيرِهِ شَيْئاً فَلْيَصْبِرْ، فَإِنَّهُ مَنْ خَرَجَ مِنَ السُّلْطَانِ شِبْراً، مَاتَ مِيتَةً جَاهِلِيَّةً). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

672- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî ji serwerê xwe tiştekî bêrê bibîne bila sebrê bike. Lewra kesê bi qasî bihustekê ji serwer dûrkeve bi mirina cahiliyê dimire." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٧٣- وَعَنْ أَبِي بَكْرَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ أَهَانَ السُّلْطَانَ أَهَانَهُ اللَّهُ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

673- Ji Ebû Bekre (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Kesê bi serokdewlet re bêbextiyê bike her wekî ewî bi Xwedê re bêbextî kiriye." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

# بَابُ النَّهي عَنْ سُؤال الإمَارَة
# DAXWAZA SERWERIYÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿تِلْكَ الدَّارُ الآخِرَةُ نَجْعَلُهَا لِلَّذِينَ لَا يُرِيدُونَ عُلُوّاً فِي الأَرْضِ وَلَا فَسَاداً وَالْعَاقِبَةُ لِلْمُتَّقِينَ﴾

"Eva te bihîstî û salixê wê ji te hate dayin jiyana axîretê ye. Emê ewî dê bidine wan, ewê ne mezinatî, ne sîtem di erdê de navên, ne jî xerabî. Û dûmayîka baş her ya parêzgaran e."[1]

٦٧٤- وَعَنْ أَبِي سَعِيدِ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ سَمُرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ لِي رَسُول اللَّهِ ﷺ: (يَا عَبْدَ الرَّحْمنِ بْنِ سَمُرَةَ: لَا تَسْأَلِ الإِمَارَةَ، فَإِنَّكَ إِنْ أُعْطِيتَهَا عَنْ غَيْرِ مَسْأَلَةٍ أُعِنْتَ عَلَيْهَا، وَإِنْ أُعْطِيتَهَا عَنْ مَسْأَلَةٍ وَكِلْتَ إِلَيْهَا، وَإِذَا حَلَفتَ عَلَى يَمِينٍ، فَرَأَيْتَ غَيْرُهَا خَيْراً مِنْهَا، فَأْتِ الَّذِي هُوَ خَيْرٌ، وَكَفِّرْ عَنْ يَمِينكَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

674- Ji Ebû Se'îd 'Ebdurrehmanê kurê Semure (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Ya 'Ebdurrehmanê kurê Semure! Tu daxwaza serweriyê neke. Lewra eger bêdaxwaz serwerî ji te re bê dayin tuyê di wê derbarê de bêyî arîkarkirin û eger bi xwestin ji te re bê dayin tu dê bi bal wê ve bêyî spartin. Heger te sond xwar lê te xeynê wê ji wê xêrtir dît, tu ya xêr bike û ji ber sondxwarina xwe ve kefaretê bide." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٦٧٥- وَعَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (يَا أَبَا ذَرٍّ إِنِّي أَرَاكَ ضَعِيفاً، وَإِنِّي أُحِبُّ لَكَ مَا أُحِبُّ لِنَفْسِي، لَا تَأَمَّرَنَّ عَلَى اثْنَيْنِ، وَلَا تَوَلَّيَنَّ مَالَ يَتِيم). رَوَاهُ مُسْلِم.

675- Ji Ebû Zerr (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Ya Ebû Zerr! Ez te jar dibînim û ez tiştê ku ji xwe re dixwazim ji te re jî dixwazim. Tu mîrtiya du mirovan jî neke û tu nebe berpirsiyarê malê yêtîmî." *Muslim riwayet kiriye.*

---

[1] Qeses, 28/83.

٦٧٦- وَعَنْهُ قَالَ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَلَا تَسْتَعْمِلُنِي؟ فَضَرَبَ بِيَدِهِ عَلَى مَنْكِبِي ثُمَّ قَالَ: (يَا أَبَا ذَرٍّ إِنَّكَ ضَعِيفٌ، وَإِنَّهَا أَمَانَةٌ، وَإِنَّهَا يَوْمَ الْقِيَامَةِ خِزْيٌ وَنَدَامَةٌ، إِلَّا مَنْ أَخَذَهَا بِحَقِّهَا، وَأَدَّى الَّذِي عَلَيْهِ فِيهَا). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

676- Dîsa ji wî (r.), got: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu min jî karmend tayîn nakî? Li ser vê yekê ewî (s.) bi her du milên min ve girt û paşê jî got: “Ya Ebû Zerr! Tu jar î, karmendî jî emanet e û roja qiyametê şermezarî û poşmanî ye. Ancax ewê ku heqê wê bidiyê û di wê de rizgar be, ne tê de.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٦٧٧- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّكُمْ سَتَحْرِصُونَ عَلَى الإِمَارَةِ، وَسَتَكُونُ نَدَامَةً يَوْمَ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

677- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Bêguman hûn çav berdidine serweriyê, ya rastî ew di roja qiyametê de poşmanî ye.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ التَّحْذِيرِ مِنْ قُرَنَاءِ السُّوءِ
## GIRTINA PAŞMÎREKÎ BAŞ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿الأَخِلَّاءُ يَوْمَئِذٍ بَعْضُهُمْ لِبَعْضٍ عَدُوٌّ إِلَّا الْمُتَّقِينَ﴾

“Wê roja (qiyametê), dost digerin dijminê hevdu, bes yên ku parêzkar/ xwedan-teqwa ne tê de”[1]

٦٧٨- عَنْ أَبِي سَعِيدٍ وَأَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَا بَعَثَ اللَّهُ مِنْ نَبِيٍّ، وَلَا اسْتَخْلَفَ مِنْ خَلِيفَةٍ إِلَّا كَانَتْ لَهُ بِطَانَتَانِ: بِطَانَةٌ تَأْمُرُهُ بِالْمَعْرُوفِ وَتَحُضُّهُ عَلَيْهِ، وَبِطَانَةٌ تَأْمُرُهُ بِالشَّرِّ وَتَحُضُّهُ عَلَيْهِ، وَالْمَعْصُومُ مَنْ عَصَمَ اللَّهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

678- Ji Ebû Se‘îd û ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê

1 Zuxruf, 43/67.

Xwedê (s.) gotiye: "Her pêxember û her xelîfeyek, du hev-razên wan hene: Yek emrê wî bi qenciyê dike û ewî teşwîq dike li ser qenciyê, yek jî emrê wî bi xerabiyê dike û ewî teşwîqî xerabiyê dike. Bêguneh, ewê ku Xwedê ew ji gunehan parastiye." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٦٧٩- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا أَرَادَ الله بِالأَمِيرِ خَيْراً جَعَلَ لَهُ وَزِيرَ صِدْقٍ، إِنْ نَسِيَ ذَكَّرَهُ، وَإِنْ ذَكَرَ أَعَانَهُ، وَإِذَا أَرَادَ بِهِ غَيْرَ ذَلِكَ جَعَلَ لَهُ وَزِيرَ سُوءٍ، إِنْ نَسِيَ لَمْ يُذَكِّرْهُ، وَإِنْ ذَكَرَ لَمْ يُعِنْهُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود عَلَى شَرْطِ مُسْلِمٍ.

679- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê Xwedê te'ala xêra mîrekî bixwaze wê ji wî re paşmîrekî qenc çêbike; eger mîr tiştek jibîr bike ew bîne bîra wî û eger mîr bi bîr bîne ew arîkariya mîr bike. Vêca wextê Xwedê te'ala xêra mîrekî nevê dê ji wî re paşmîrekî xerab çêbike; eger mîr tiştekî jibîr bike ew naynê bîra wî û eger mîr bi bîr bîne ew arîkariya wî nake." *Ebû Dawûd li ser şertê Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهي عَنْ تَوْلِيَةِ الإمَارَة وَالْقَضَاء لِمَنْ حَرِصَ عَلَيْهَا
## NEDANA PÊŞENGIYÊ JI XWESTEKAN RE

٦٨٠-عَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: دَخَلْتُ عَلَى النَّبِيِّ ﷺ أَنَا وَرَجُلَانِ مِنْ بَنِي عَمِّي، فَقَالَ أَحَدُهُمَا: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَمِّرْنَا عَلَى بَعْضِ مَا وَلاَّكَ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ، وَقَالَ الآخَرُ مِثْلَ ذَلِكَ، فَقَالَ: (إِنَّا وَاللَّهِ، لَا نُوَلِّي هَذَا الْعَمَلَ أَحَداً سَأَلَهُ، أَوْ أَحَداً حَرَصَ عَلَيْهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

680- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.), got: Ez û du kurapên min em çûne cem Pêxemberê Xwedê (s.). Vêca yekî ji wan her duyan got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu me têxe mîr li ser hinek ciyê ku Xwedê ('ezze we celle) kiriye bin destê te. Yê din jî wekî wî got. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: Bi sond, em evî emelî nadine tu kesê ku dixwaze û yan jî hirsê li ser bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

# كِتَابُ الأَدَبِ
# KITABUL-EDEB

## بَابُ الْحَيَاءِ وَفَضْلِهِ
## ŞERMKIRIN/HEYA

٦٨١-عَنْ اِبْنِ عُمَرَ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ مَرَّ عَلَى رَجُلٍ مِنَ الأَنْصَارِ وَهُوَ يَعِظُ أَخَاهُ فِي الْحَيَاءِ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (دَعْهُ فَإِنَّ الحَيَاءَ مِنَ الإِيْمَانِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

681- Ji Îbnu ‘Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) li ber mirovekî Ensarî re derbas dibû ku wî derbarê heyayê de nesîhet li birayê xwe dikir. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Tu wî ser rewşa wî bihêle, bila şerm bike; lewra şerm û heya ji îmanê ye.” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٦٨٢-وَعَنْ عِمْرَانَ بْنِ حُصَيْنٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (الْحَيَاءُ لَا يَأْتِي إِلَّا بِخَيْرٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: (الْحَيَاءُ خَيْرٌ كُلُّهُ) أَوْ قَالَ: (الْحَيَاءُ كُلُّهُ خَيْرٌ).

682- Ji ‘Îmranê kure Husayn (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Şerm û heya bes qenciyê tîne.” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

Di rîwayeteke Muslim de: Heya temamê wê xêr e. Û yan jî wiha got: Temamê heyayê xêr e.

٦٨٣- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: الإِيمَانُ بِضْعٌ وَسَبْعُونَ، أَوْ بِضْعٌ وَسِتُّونَ شُعْبَةً، فَأَفْضَلُهَا قَوْلُ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ، وَأَدْنَاهَا إِمَاطَةُ الأَذَى عَنِ الطَّرِيقِ، وَالْحَيَاءُ شُعْبَةٌ مِنَ الإِيمَانِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

683- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Îman heftê û çend perçe ne, yan jî şêst û çend perçe ne. Qençtirînê wan gotinan –la îlahe îllellah– e, kêmtirê wan jî hildana tiştê ku eziyetê dide rêwiyan ji ser rê. Heya jî perçekî îmanê ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٨٤-وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ أَشَدَّ حَيَاءً مِنَ الْعَذْرَاءِ فِي خِدْرِهَا، فَإِذَا رَأَى شَيْئاً يَكْرَهُهُ عَرَفْنَاهُ فِي وَجْهِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

684- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji keçika destnedayî di bin perdê de jî şermokertir bû. Wextê wî (s.) tiştekî nexweş bidîta me ew di rûyê wî de fêm dikir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ حِفْظِ السِّر
## PARASTINA SIRRAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَأَوْفُوا بِالْعَهْدِ إِنَّ الْعَهْدَ كَانَ مَسْؤُولاً﴾

"Peymana xwe bi cih bînin. Bi rastî wê ji we pirsiyara peymanê bête kirin."[1]

٦٨٥- عَنْ أَبِي سَعِيدٍ الخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ) إِنَّ مِنْ أَشَرِّ النَّاسِ عِنْدَ اللَّهِ مَنْزِلَةً يَوْمَ الْقِيَامَةِ الرَّجُلَ يُفْضِي إِلَى الْمَرْأَةِ وَتُفْضِي إِلَيْهِ ثُمَّ يَنْشُرُ سِرَّهَا). رَوَاهُ مُسْلِم.

685- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Roja qiyametê li cem Xwedê xerabtirînê însanan ew e; ku bi şev digel jinika xwe radizê û paşê jî sirra wê belav dike." *Muslim rîwayet kiriye.*

1 Îsra, 17/34.

٦٨٦-وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ عُمَرَ ﷺ حِينَ تَأَيَّمَتْ بِنْتُهُ حَفْصَةُ قَالَ: لَقِيت عُثْمَانَ بْنَ عَفَّان ﷺ فَعَرَضْتُ عَلَيْهِ حَفْصَةَ، فَقُلْتُ: إِنْ شِئْتَ أَنْكَحْتُكَ حَفْصَةَ بِنْتَ عُمَرَ، فَقَالَ: سَأَنْظُرُ فِي أَمْرِي، فَلَبِثْتُ لَيَالِيَ، ثُمَّ لَقِيَنِي، فَقَالَ: قَدْ بَدَا لِي أَنْ لَا أَتَزَوَّجَ يَوْمِي هَذَا، فَلَقِيتُ أَبَا بَكْرٍ الصِّدِّيقَ ﷺ فَقُلْتُ: إِنْ شِئْتَ أَنْكَحْتُكَ حَفْصَةَ بِنْتَ عُمَرَ، فَصَمَتَ أَبُو بَكْرٍ، فَلَمْ يَرْجِعْ إِلَيَّ شَيْئاً، فَكُنْتُ عَلَيْهِ أَوْجَدَ مِنِّي عَلَى عُثْمَانَ، فَلَبِثْتُ لَيَالِيَ، ثُمَّ خَطَبَهَا النَّبِيُّ ﷺ فَأَنْكَحْتُهَا إِيَّاهُ، فَلَقِيَنِي أَبُو بَكْرٍ، فَقَالَ: لَعَلَّكَ وَجَدْتَ عَلَيَّ حِينَ عَرَضْتَ عَلَيَّ حَفْصَةَ فَلَمْ أَرْجِعْ إِلَيْكَ شَيْئاً؟ فَقُلْتُ: نَعَمْ، قَالَ: فَإِنَّهُ لَمْ يَمْنَعْنِي أَنْ أَرْجِعَ إِلَيْكَ فِيمَا عَرَضْتَ عَلَيَّ إِلَّا أَنِّي كُنْتُ عَلِمْتُ أَنَّ النَّبِيَّ ذَكَرَهَا، فَلَمْ أَكُنْ لأُفْشِيَ سِرَّ رَسُولَ الله ﷺ وَلَوْ تَرَكَهَا النَّبِيُّ ﷺ لَقَبِلْتُهَا). رَوَاهُ البُخَارِي.

686- Ji 'Ebdullahê Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku 'Umerê kurê Xettab (r.) wextê keça wî Hefsete jinebî ma, wî got: Ez rastî Osmanê kurê 'Effan hatim, min Hefsete jê re pêşkêş kir û min got: Heger tu bixwazî ezê Hefseteyê li te mahr bikim. Wî got: Ka ez lê binêrim (ez bifikirim). Ez çend şevan li hêviyê mam, piştre ew rastî min hat û got: Niyeta min tune ku ez vê demê bizewicim. Paşê ez rastî Ebû Bekirê Siddîq (r.) hatim, min ji re got: Heger tu bixwazî ezê Hefseteye li te mahr bikim. Ebû Bekir xwe kerr kir û tu bersîvek neda. Ez ji Osman zehftir ji wî 'enirîm. Ez çend şevan sekinîm, paşê Pêxemberê Xwedê (s.) ew ji min xwest min jî qebûl kir û min ew li Pêxemberê Xwedê (s.) mahr kir. Vêca Ebû Bekirê Siddîq (r.) rastî min hat û got: Dibe ku tu ji min xeyidîbî wextê te Hefsete ji min re pêşkeş kir û min jî tu bersîv neda te? Min got: Belê. Vêca Ebû Bekirê Siddîq got: Bersiv nedana min bes bi sedem zanebûna min bi wî qasî bû ku Pêxemberê Xwedê (s.) behsa wê kiribû. Vêca min nexwest ku ez sirra Pêxemberê Xwedê (s.) eşkere bikim, eger Pêxemberê Xwedê (s.) terka wê bikira minê dê ew qebûl bikira. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٦٨٧- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: كُنَّ أَزْوَاجُ النَّبِيِّ ﷺ عِنْدَهُ، فَأَقْبَلَتْ فَاطِمَةَ ﷺ تَمْشِي، مَا تَخْطِىءُ مِشْيَتُهَا مِنْ مِشْيَةِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ شَيْئاً، فَلَمَّا رَآها رَحَّبَ بِهَا، وَقَالَ: (مَرْحَباً

بِإِبْنَتِي) ثُمَّ أَجْلَسَهَا عَنْ يَمِينِهِ أَوْ عَنْ شِمَالِهِ، ثُمَّ سَارَّهَا فَبَكَتْ بُكَاءً شَدِيداً، فَلَمَّا رَأَى جَزَعَهَا، سَارَّهَا الثَّانِيَةَ، فَضَحِكَتْ، فَقُلْتُ لَهَا: خَصَّكِ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ مِنْ بَيْنِ نِسَائِهِ بِالسِّرَارِ، ثُمَّ أَنْتِ تَبْكِينَ، فَلَمَّا قَامَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ سَأَلْتُهَا: مَا قَالَ لكِ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ قَالَتْ: مَا كُنْتُ أُفْشِي عَلَى رَسُولِ اللَّهِ سِرَّهُ، فَلَمَّا تُوُفِّيَ رَسُولُ الله ﷺ قُلْتُ: عَزَمْتُ عَلَيْكِ بِمَا لِي عَلَيْكِ مِنَ الْحَقِّ، لَمَا حَدَّثْتِنِي مَا قَالَ لكِ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فقَالَتْ: أَمَّا الآنَ فَنَعَمْ، أَمَّا حِينَ سَارَّنِي فِي المَرَّةِ الأُولَى فَأَخْبَرَنِي أَنَّ جِبْرِيلَ كَانَ يُعَارِضُهُ الْقُرْآنَ فِي كُلِّ سَنَةٍ مَرَّةً أَوْ مرَّتَيْنِ، وَأَنَّهُ عَارَضَهُ الآنَ مَرَّتَيْنِ، وَإِنِّي لَا أُرَى الأَجَلَ إِلَّا قَدِ اقْتَرَبَ، فَاتَّقِي اللَّهَ وَاصْبِرِي، فَإِنَّهُ نِعْمَ السَّلَفُ أَنَا لَكِ، فَبَكَيْتُ بُكَائِي الَّذِي رَأَيْتِ، فَلَمَّا رَأَى جَزَعِي سَارَّنِي الثَّانِيَةَ، فَقَالَ: (يَا فَاطِمَةُ أَمَا تَرْضَيْنَ أَنْ تَكُونِي سَيِّدَةَ نِسَاءِ الْمُؤْمِنِينَ، أَوْ سَيِّدَةَ نِسَاءِ هَذِهِ الأُمَّةِ؟) فَضَحِكْتُ ضَحِكِي الَّذِي رَأَيْتِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

687- Ji ‘Aîşe (r.), got: Em ezwacê Pêxember (s.) li cem wî (s.) bûn. Me lê nihêrî Fatime (r.) derket û hat ku rêveçûyina wê mîna rêveçûyina Pêxemberê Xwedê (s.) bû. Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) çav pê ket kêfxweş bû, kêfxweşî pê da jê re got: “Merheba keça min.” Piştre ew li aliyê xwe yê rastê, û yan jî li aliyê xwe yê çepê da rûniştand. Paşê bi dizîve jê re tiştek got û Fatimeyê xiste kurînî giriya. Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) kerb û xema wê dît cara diduyan jê re bi dizîve tiştek got vêca Fatime îcar jî keniya. Li ser vê yekê min ji Fatimeyê re got: Pêxemberê Xwedê (s.) di nav ezwacên xwe de ji bo sirrê xwe tu bijartî û tu jî digrî? Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) rabû û çû, min jê pirsî: Pêxemberê Xwedê (s.) ji te re çi got? Fatime got: Ez nikarim sirra Pêxemberê Xwedê (s.) eşkere bikim. Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) wefat kir min ji Fatimeyê re got: Tu bidî xatirê wî heqê min ê ku li ser te heyî, tu ji min re bêje ka ew çi bû ku Pêxemberê Xwedê (s.) ji te re got? Fatime got: Heçîka niha belê (ezê ji te re bêjim). Wextê cara yekem tiştê ku ji min re dizî got eva bû; ji min re got: “Cibrîl her salê carekê, û yan du caran dihat Qur’an digel min muqabele dikir, lê îsal du caran Qur’an digel min muqabele kir. Vêca bi vê yekê ez dibînim ku ecelê min nêzîk bûye. Îcar tu ji Xwedê bitirse û sebrê bike. Bêguman ez ji te re xweş selef im (ezê beriya te herim). Li ser vêya çawa ku te dît ez

giriyam. Wextê wî (s.) dît ku ez gelek xemgîn bûm, vêca cara diduyan ji min re bi dizîve got: Ya Fatime! Qey tu kêfxweş nabî ku tu sereka jinikên dunyayê bî? Yan jî tu sereka jinikên vê ummetê bî? Vêca ez jî keniyam, çawa ku te dît. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٦٨٨- وَعَنْ ثَابِتٍ عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: أَتَى عَلَيَّ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَأَنَا أَلْعَبُ مَعَ الْغِلْمَانِ، فَسَلَّمَ عَلَيْنَا، فَبَعَثَنِي فِي حَاجَةٍ، فَأَبْطَأْتُ عَلَى أُمِّي، فَلَمَّا جِئْتُ قَالَتْ: مَا حَبَسَكَ؟ قُلْتُ بَعَثَنِي رَسُولُ اللَّهِ لِحَاجَة، قَالَتْ: مَا حَاجَتُهُ؟ قُلْتُ: إِنَّهَا سِرٌّ، قَالَتْ: لَا تخبِرَنَّ بِسِرِّ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَحَداً، قَالَ أَنَسٌ: وَالله لَوْ حَدَّثْتُ بِهِ أَحَداً لَحَدَّثْتُكَ بِهِ يَا ثَابِتُ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ، وَرَوَى الْبُخَارِي بَعْضهُ مُخْتَصَراً.

688- Ji Sabit ji Enes, (r.) got: Pêxemberê Xwedê (s.) hate cem min û min jî digel zarokan dileyîst. Selam da me û wî (s.) ji bo hewceyîkê ez şandime cîhekî. Vêca ez dereng hatime cem dayika xwe. Wextê ez hatim, wê got: Tu çima dereng mayî? Min got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji bo hewceyîkê ez şiyandime cîhekî. Wê got: Çi kar bû? Min got: Ew sirr e (ez nabêjim). Wê got: Tu sirrê Pêxemberê Xwedê (s.) ji tu kesî re nebêje. Enes dibêje: Ya Sabit! Bi sond, eger min sirra wî (s.) ji yekî re bigota miheqeq minê ji te re bigota. *Buxarî û Muslim riwayet kirine. (bi kurtî)*

## بَابُ الْوَفَاء بِالْعَهْدِ
## PÊKANÎNA PEYMANÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَأَوْفُوا بِالْعَهْدِ إِنَّ الْعَهْدَ كَانَ مَسْئُولاً﴾

"Peymana xwe bi cih bînin. Bi rastî wê ji we pirsiyara peymanê bête kirin."[1]

﴿وَأَوْفُوا بِعَهْدِ اللَّهِ إِذَا عَاهَدْتُمْ﴾

"Gava we peyman da, peymana Xwedê pêk bînin."[2]

1 Îsra, 17/34.
2 Nehl, 16/91.

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا أَوْفُوا بِالْعُقُودِ﴾

"Gelî ewên bawerî anîne, peymanên xwe bi cih bînin."[1]

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا لِمَ تَقُولُونَ مَا لَا تَفْعَلُونَ ۞ كَبُرَ مَقْتاً عِنْدَ اللَّهِ أَنْ تَقُولُوا مَا لَا تَفْعَلُونَ﴾

"Gelî ewên bawerî anîne! Çira tiştî ku hûn nakin dibêjin? Axaftina hûn dibêjin û nakin, kerbê wê li cem Xwedê pirtir e."[2]

٦٨٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (آيَةُ الْمُنَافِقِ ثَلاثٌ: إِذَا حَدَّثَ كَذَبَ، وَإِذَا وَعَدَ أَخلَفَ، وَإِذَا اؤْتُمِنَ خَانَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

زَادَ فِي رِوَايةٍ لِمُسْلِم: (وَإِنْ صَامَ وَصَلَّى وَزَعَمَ أَنَّهُ مُسلِمٌ).

689- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "'Elametên munafiqî sisê ne: Wextê diştexile derewan dike, wextê soz da sozên xwe pêk nayne û wextê emanetek stand ew xiyanetê dike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayeta Muslim de: "Çenda ku rojî bigre û nimêj bike û bêje ez misilmanim jî."

٦٩٠- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عمرو بْنِ الْعَاصِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (أَرْبَعٌ مَنْ كُنَّ فِيهِ كَانَ مُنَافِقاً خَالِصاً، وَمَنْ كَانَتْ فِيهِ خَصْلَةٌ مِنْهُنَّ كَانَتْ فِيهِ خَصْلَةٌ مِنَ النِّفَاقِ حَتَّى يَدَعَهَا إِذَا اؤْتُمِنَ خَانَ، وَإِذَا حَدَّثَ كَذَبَ، وَإِذَا عَاهَدَ غَدَرَ، وَإِذَا خَاصَمَ فَجَرَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

690- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê ku tê de çar xûy û xeslet hebin ew munafiqê xalis e û kesê ku tê de yek ji van her çar xesletan hebe bêguman di wî de jî nîşaneke munafiqiyê heye heta wê biterikîne: Wextê emanetek stand xiyanetê dike, dema axaft derew dike, wextê soz da nayne cih û wextê minaqeşe kir ji rê/heqiyê derdikeve." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٩١-وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ لِي النَّبِيُّ ﷺ: (لَوْ قَدْ جَاءَ مَالُ الْبَحْرَيْنِ قَدْ أَعْطَيْتُكَ هَكَذا وَهَكَذا وَهَكَذَا) فَلَمْ يَجِيءْ مَالُ الْبَحْرَيْنِ حَتَّى قُبِضَ النَّبِيُّ، فَلَمَّا جَاءَ مَالُ

1 Ma'îde, 5/1.

2 Sef, 61/2-3.

الْبَحْرَيْنِ أَمَرَ أَبُو بَكْرٍ ﷺ فَنَادَى: مَنْ كَانَ لَهُ عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ عِدَةٌ أَوْ دَيْنٌ فَلْيَأْتِنَا، فَأَتَيْتُهُ وَقُلْتُ لَهُ: إِنَّ النَّبِيَّ قَالَ لِي كَذَا، وَكَذَا، فَحَثَى لِي حَثْيَةً، فَعَدَدْتُهَا، فَإِذَا هِيَ خَمْسُمِائَةٍ، فَقَالَ لِي: خُذْ مِثْلَيْهَا. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

691- Ji Cabir (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Heger malê Behreynê were ezê wisa wisa û wisa bidime te." Lêbelê heta wefata Pêxemberê Xwedê (s.) malê Behreynê nehat. Vêca wextê malê Behreynê hat Ebû Bekirê Siddîq xelîfe bû. Ebû Bekir da gazîkirin: "Li cem Pêxemberê Xwedê (s.) soz û yan deynekî kê hebe bila ew bê cem me." Vêca ez jî hatim cem wî (r.) û min jê re got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re wiha wiha gotibû. Li ser vê gotinê Ebû Bekir ji min re parek veqetand, min jimart, min lê nihêrî ku pêncsed e. Ebû Bekir ji min re got: "Tu du carê wî hilde." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ الْمُحَافَظَةِ عَلَى مَا إِعْتَادَهُ مِنَ الْخَيْرِ

## BERDEWAMKIRINA XÊRXWAZIYÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿إِنَّ اللَّهَ لَا يُغَيِّرُ مَا بِقَوْمٍ حَتَّى يُغَيِّرُوا مَا بِأَنْفُسِهِمْ﴾

"Bêguman Xweda, tu miletî naguherîne, ta ku ew xwe bi xwe xwe neguherine."[1]

﴿وَلَا تَكُونُوا كَالَّتِي نَقَضَتْ غَزْلَهَا مِنْ بَعْدِ قُوَّةٍ أَنْكَاثاً﴾

"Vêca hûn jî wekî wê (jinikê) nebin; ewa hiriya xwe piştî bi hêz û mukumî ristiye ji hev veke."[2]

﴿وَلَا يَكُونُوا كَالَّذِينَ أُوتُوا الْكِتَابَ مِنْ قَبْلُ فَطَالَ عَلَيْهِمُ الأَمَدُ فَقَسَتْ قُلُوبُهُمْ﴾

"Wekî wan nebin; ewên ji berê de kitêb bo wan hatin û piştî sal û zeman ser wan ve çûn dilê wan req bû."[3]

﴿فَمَا رَعَوْهَا حَقَّ رِعَايَتِهَا﴾

1 Re'd, 13/11.
2 Nehl, 16/92.
3 Hedîd, 57/16.

"Ehlê kitêban ew emanet qenc pêkneanîn."[1]

٦٩٢- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ الله ﷺ: (يَا عَبْدَ اللَّهِ، لَا تَكُنْ مِثْلَ فُلَانٍ، كَانَ يَقُومُ اللَّيْلَ فَتَرَكَ قِيَامَ اللَّيْلِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

692- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Ya 'Ebdullah! Tu nebe wekî wî mirovê ku bi şev radibû îbadet dikir, lêbelê dûre ew yeka terk kir." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ إِسْتِحْبَاب طيب الْكَلَامِ
## ZIMANXWEŞÎ Û DEVKENÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿واخْفِضْ جَنَاحَكَ لِلْمُؤْمِنِينَ﴾

"Tu perr û baskê xwe ji bo mu'minan daîne."[2]

﴿وَلَوْ كُنْتَ فَظّاً غَلِيظَ الْقَلْبِ لَانْفَضُّوا مِنْ حَوْلِكَ﴾

"Heger tu mirovekî dilhişk û dilreq bayî, ewê ji dora te bireviyana."[3]

٦٩٣- عَنْ عَدِيِّ بْنِ حَاتِمٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (اتَّقُوا النَّارَ وَلَوْ بِشِقِّ تَمْرَةٍ، فَمَنْ لَمْ يَجِدْ فَبِكَلِمَةٍ طَيِّبَةٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

693- Ji 'Ediyyê kurê Hatem (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bi qetek xurme jî be hûn xwe ji êgir biparêzin. Kesê ew jî nedît bila bi gotineke xweş (xwe ji êgir biparêze)." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٦٩٤- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (وَالْكَلِمَةُ الطَّيِّبَةُ صَدَقَةٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

694- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Gotina xweş jî sedeqe ye." *Buxari û Muslim riwayet kirine.*

1 Hedîd, 57/27.
2 Hîcr, 15/88.
3 Alî 'Îmran, 3/159.

٦٩٥- وَعَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَحْقِرَنَّ مِنَ الْمَعْرُوفِ شَيْئاً، وَلَوْ أَنْ تَلْقَى أَخَاكَ بِوَجْهٍ طَلِقٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

695- Ji Ebû Zerrê Xiffarî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Bi qasî pêşwaziya te ya li birayê te bi rûyekî ken be jî, tu ji qenciyê tu tiştekî piçûk nebîne." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ إِسْتِحْبَاب بَيَان الْكَلَام
## RAVEKIRINA AXAFTINÊ

٦٩٦- عَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ إِذَا تَكَلَّمَ بِكَلِمَةٍ أَعَادَهَا ثَلَاثاً حَتَّى تُفْهَمَ عَنْهُ، وَإِذَا أَتَى عَلَى قَوْمٍ فَسَلَّمَ عَلَيْهِمْ سَلَّمَ عَلَيْهِمْ ثَلَاثاً). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

696- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wextê gotinek digot, gotina xwe sê caran dubare dikir da ku gotina wî bê fêmkirin. Wextê biçûya bal komekê û selam li wan bikira sê caran selam dikir. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٦٩٧- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: كَانَ كَلَامُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ كَلَاماً فَصْلاً يَفْهَمُهُ كُلُّ مَنْ يَسْمَعُهُ. رَوَاهُ أَبُو دَاوُد.

697- Ji 'Aîşe (r.), got: Axaftina Pêxemberê Xwedê (s.) ji hev veqetandî bû, heçî kesê ku axaftina wî bibihîsta gotina wî fêm dikir. *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

## بَابُ إِصْغَاء الْجَلِيس لِحَدِيث جَلِيسِهِ
## GUHDAN

٦٩٨- عَنْ جَرِيرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فِي حَجَّةِ الْوَدَاعِ: (اسْتَنْصِتِ النَّاسَ) ثُمَّ قَالَ: (لَا تَرْجِعُوا بَعْدِي كُفَّاراً يَضْرِبُ بَعْضُكُمْ رِقَابَ بَعْضٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

698-Ji Cabirê kurê 'Ebdullah (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) di Heccetul-Weda'ê de ji min re got: "Tu însanan bê deng bike (yanî bila guhê wan li ser min be)." Paşê jî wî got: "Hûn piştî min negerine kafir; ku hinek ji we stûyê hinekan bibirre." *Buxari û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ الْوَعْظِ وَالإِقْتِصَادِ فِيهِ
## WE'Z Û ŞÎRET

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿ادْعُ إِلَى سَبِيلِ رَبِّكَ بِالْحِكْمَةِ وَالْمَوْعِظَةِ الْحَسَنَةِ﴾

"Bi hîkmet û şîreta qenc dawetî rêya Xwedê bike."[1]

٦٩٩- عَنْ أَبِي وَائِلٍ شَقِيقِ بْنِ سَلَمَةَ قَالَ: كَانَ ابْنُ مَسْعُودٍ ﷺ يُذَكِّرُنَا فِي كُلِّ خَمِيسٍ، فَقَالَ لَهُ رَجُلٌ: يَا أَبَا عَبْدِ الرَّحْمنِ، لَوَدِدْتُ أَنَّكَ ذَكَّرْتَنَا كُلَّ يَوْمٍ، فَقَالَ: أَما إِنَّهُ يَمْنَعني مِنْ ذَلِكَ أَنِّي أَكْرَهُ أَنْ أُمِلَّكُمْ وَإِنِّي أَتخَوَّلُكُمْ بِالْمَوْعِظَةِ كَمَا كَانَ رَسُولُ اللَّهُ ﷺ يَتَخَوَّلنَا بِهَا مَخَافَةَ السَّآمَةِ عَلَيْنَا. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

699-Ji Ebû Wa'il Şeqîqê kurê Seleme (r.), got: kurê Mes'ûd (r.) her rojên pêncşemê ji me re we'z dikir. Vêca mirovekî ji wî re got: Ya Ebû 'Ebdurrehmen! Bi sond, ez dixwazim tu her roj ji me re we'zê bikî. Îcar ewî (r.) got: Bêguman tiştê ku men'a min ji we'zê her roj dike ew e ku ez naxwazim we 'eciz bikim. Çawa ku Pêxemberê Xwedê (s.) ji bo ku li me giran neyê navber dida we'zên xwe, ez jî navberê didime we'zên xwe. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٠٠- وَعَنْ أَبِي الْيَقْظَان عَمَّار بن يَاسِرٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ طُولَ صَلَاةِ الرَّجُلِ، وَقِصَرَ خُطْبَتِهِ، مَئِنَّةٌ مِنْ فقْهِهِ، فَأَطِيلُوا الصَّلَاةَ، وَأَقْصِرُوا الخُطْبَةَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

700- Ji Ebî Yeqzan 'Eamrê kurê Yasir (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Bêguman dirêjaya nimêja zilam û kurtaya xutba wî nişanên zanebûna wî ne. Vêca hûn jî nimêjê dirêj bikin û xutbê kurt bikin." *Muslim rîwayet kiriye.*

٧٠١- وَعَنْ مُعَاوِيَةَ بْنِ الْحَكَم السُّلَمِيِّ ﷺ قَالَ: بَيْنَمَا أَنَا أُصَلِّي مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ إِذَا عَطَسَ رَجُلٌ مِنَ القَوْمِ، فَقُلْتُ: يَرْحَمُكَ اللَّهُ، فَرَمَانِي الْقَوْمُ بِأَبْصَارِهِمْ فَقُلْتُ: وَاثُكْلَ

1 Nehl, 16/125.

  

أُمِّيَاهُ، مَا شَأْنُكُمْ تَنْظُرُونَ إِلَيَّ؟ فَجَعلُوا يَضْرِبُونَ بِأَيْدِيهِمْ عَلَى أَفْخَاذِهِمْ، فَلَمَّا رَأَيْتُهُمْ يُصَمِّتُونَنِي لَكِنِّي سَكَتُّ، فَلَمَّا صَلَّى رَسُولُ الله ﷺ فَبِأَبِي هُوَ وَأُمِّي، مَا رَأَيْتُ مُعَلِّماً قَبْلَه وَلَا بَعدَهُ أَحْسَنَ تَعْلِيمًا مِنْهُ، فَوَ اللَّهِ مَا كَهَرَنِي وَلَا ضَرَبَنِي وَلَا شَتَمَنِي، قَالَ: (إِنَّ هَذِهِ الصَّلَاةَ لَا يَصْلُحُ فِيهَا شَيْءٌ مِنْ كَلَامِ النَّاسِ، إِنَّمَا هِيَ التَّسْبِيحُ والتَّكْبِيرُ، وَقِرَاءَةِ الْقُرْآنِ) أَوْ كَمَا قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، إِنِّي حَدِيثُ عَهْدٍ بِجَاهِلِيَّةٍ، وَقَدْ جَاءَ الله بِالإِسْلَامِ، وَإِنَّ مِنَّا رِجَالاً يَأْتُونَ الْكُهَّانَ، قَالَ: (فَلَا تَأْتِهِمْ) قُلْتُ: وَمِنَّا رِجَالٌ يَتَطَيَّرُونَ، قَالَ: (ذَلِكَ شَيْءٌ يَجِدُونَه فِي صُدُورِهِم، فَلَا يَصُدُّهُمْ. رَوَاهُ مُسْلِم.

701- Ji Mu'awiyeyê kurê Hekem es-Sulemî (r.), got: Min digel Pêxemberê Xwedê (s.) nimêj dikir, mirovek ji ehlê cema'etê bênijî, min jî got: Yerhemûkellah, (yanî Xweda rehmê li te bike). Vêca civatê bi çavê xwe ez 'eybdar kirim. Min jî got: Kezeba diya min li min şewitî be! Çi ye hûn wisa li min dinêrin? Îcar jî ewan bi destê xwe li çokên xwe dan (yanî çima ez li ser nimêjê diaxivim). Wextê min dît ku ew dixebitin ku min bidine seknandin min xwe ker kir. Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) nimêj xelas kir, bav û dayika min gorî wî bin, min ne ji beriya wî û ne jî piştî wî mamosteyekî ji wî rindtir hînî mirovî bike nedît. Bi sond, ne me'dê xwe kir, ne li min da û ne jî ji min re pirs gotin. Bes wiha got: "Bêguman ev nimêja hanê dirust nîne tiştek ji gotinê însanan tê de hebe, nimêj bes tesbîh e, tekbîr e û xwendina Qur'anê ye." Yan jî Pêxemberê Xwedê (s.) gotinek wekî vê got. Min got: Ya Pêxemberê Xwedê, ez nêzîkî dewra cahiliyetê me, Xwedê te'ala dînê Îslamê şand, lê hê jî hinek mirov ji me diçine bal falvekera. (Tu çi dibêjî)? Ewî (s.) got: "Tu neçe cem wan." Min got: Hinek mirov ji me jî li pey oxiriyê diçin. (Tu çi dibêjî)? Ewî (s.) got: "Ew hîsek e di dilê xwe de wê dibînin, bila ew wana ji kar û kiryaran dûr neke." *Muslim riwayet kiriye.*

٧٠٢- وَعَنْ الْعِرْبَاضِ بْنِ سَارِيَةَ ﷺ قَالَ: وَعَظَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ مَوْعِظَةً وَجِلَتْ مِنْهَا الْقُلُوب، وَذَرَفَتْ مِنْهَا الْعُيُونَ، وَذَكَرَ الحَدِيثَ. وَقَدْ سَبَقَ بِكَمَالِهِ فِي بَابِ الأَمْرِ بِالْمُحَافَظَةِ عَلَى السُّنَّةِ. رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

702- Ji 'Irbadê kurê Sariye (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) we'zeke wisa

li me kir ji bandora wê qelb tirsiyan û ji çavan jî hêstir rijiyan. Temamê hedîsê zikir kir. Ev hedîs bi temamê xwe di babê “parastina sunnetê” de derbas bûye. *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen û sehîh e.*

## بَابُ الْوِقَارِ وَالسَّكِينَةِ
## HÊMIN/GIRANÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَعِبَادُ الرَّحْمَنِ الَّذِينَ يَمْشُونَ عَلَى الأَرْضِ هَوْناً وَإِذَا خَاطَبَهُم الجَاهِلُونَ قَالُوا سَلَاماً﴾

“Bendeyê Xwedayê dilovan (yê dirust) ew in, ewê bi edeb û bi waqar li ser erdê bi rê ve diçin. Heger nezanan (bi req) axaftin, ew dibêjin selam li ser we be.”[1]

٧٠٣- عَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: مَا رَأَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ مُسْتَجْمِعاً قَطُّ ضَاحِكاً، حَتَّى تُرَى مِنْهُ لَهَوَاتُهُ، إِنَّمَا كَانَ يَتَبَسَّمُ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

703- Ji ‘Aîşe (r.), got: Min Pêxemberê Xwedê (s.) qet nedît ku heta diranê wî yê piçûk bê dîtin hurehur bikene, lêbelê ew dibeşişî. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ النَّدْبِ إِلَى إِتْيَانِ الصَّلَةِ وَالْعِلْمِ
## ÇÛYINA NIMÊJÊ Û CIVAKA ‘ILMÊ BI HÊMINÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَمَنْ يُعَظِّمْ شَعَائِرَ الله فَإِنَّهَا مِنْ تَقْوَى الْقُلُوبِ﴾

“Her kî şe‘a’irên (dînê) Xwedê mezin (te‘zîm) bike, bêşik ew ji teqwa qelban e.”[2]

٧٠٤- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﵁ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِذَا أُقِيمَتِ الصَّلَاةُ، فَلَا تَأْتُوهَا وَأَنْتُمْ تَسْعَوْنَ، وَأْتُوهَا وَأَنْتُمْ تَمْشُونَ، وَعَلَيْكُمُ السَّكِينَة، فَمَا أَدْرَكْتُمْ فَصَلُّوا، وَمَا

1 Furqan, 25/63.
2 Hec, 22/32.

فَاتكُمْ فَأَتِمُّوا). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

زَادَ مُسْلِم فِي رِوَايَةٍ لَهُ: (فَإِنَّ أَحَدَكُمْ إِذَا كَانَ يَعمِدُ إِلَى الصَّلَاةِ فَهُوَ فِي صَلَاةٍ).

704- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Wextê nimêj hate kirin hûn bi lez neyênê, hêdî hêdî bi giranî werin. Qismê hûn gihîştinê bikin û yê ku negihîştinê jî temam bikin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Muslim di rîwayeteke xwe de eva zêde kiriye: Bêguman wextê yekî ji we qesda nimêjê kir, êdî ew di nimêjê de ye.

٧٠٥- وَعَنْ إِبْنِ عَبَّاسٍ ﵁ أَنَّهُ دَفَعَ مَعَ النَّبِيِّ ﷺ يَوْمَ عَرَفَةَ، فَسَمِعَ النَّبِيُّ ﷺ وَرَاءَهُ زَجْراً شَدِيداً وَضَرْباً وَصَوْتاً لِلإِبِلِ، فَأَشَارَ بِسَوْطِهِ إِلَيْهِمْ وَقَالَ: (أَيُّهَا النَّاسُ عَلَيْكُمْ بِالسَّكِينَةِ فَإِنَّ الْبِرَّ لَيْسَ بِالإِيضَاعِ) رَوَاهُ البُخَارِي، وَرَوَى مُسْلِم بَعْضَهُ.

706- Ji kurê ‘Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku ew roja ‘Erefê digel Pêxemberê Xwedê (s.) bûye. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) li pey xwe dengê ajotina hêstira bi zorê, bi lêdan bi qemçûyê xwe îşaret li wan kir û got: “Gelî mirovan, divê hûn giran bin. Lewra xêr û başî bi lezkirinê nîne.”

## بَابُ إِكْرَامِ الضَّيْفِ
## MÊVANPERWERÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿هَلْ أَتَاكَ حَدِيثُ ضَيْفِ إِبْرَاهِيمَ الْمُكْرَمِينَ ۝ إِذْ دَخَلُوا عَلَيْهِ فَقَالُوا سَلَاماً قَالَ سَلَامٌ قَوْمٌ مُنْكَرُونَ ۝ فَرَاغَ إِلَى أَهْلِهِ فَجَاءَ بِعِجلٍ سَمِينٍ ۝ فَقَرَّبَهُ إِلَيْهِمْ قَالَ أَلَا تَأْكُلُونَ﴾

“Erê behsa mêvanê Îbrahîm, ewê qedirgiran, gihîştiye te? Wextê çûne cem û silav lê kirin, silav li wan vegerand û got: Hûn nenas in (ez we nas nakim). Vêca bi lez û bê mêvan pê bihesin çû aliyê malê û golikeke qelew (biraştî) anî. Got: Ma hûn naxwin?”[1]

1 Zariyat, 51/24-25-26-27.

﴿وَجَاءَهُ قَوْمُهُ يُهْرَعُونَ إِلَيْهِ وَمِنْ قَبْلُ كَانُوا يَعْمَلُونَ السَّيِّئَاتِ قَالَ يَا قَوْمِ هَؤُلَاءِ بَنَاتِي هُنَّ أَطْهَرُ لَكُمْ فَاتَّقُوا اللَّهَ وَلَا تُخْزُونِ فِي ضَيْفِي أَلَيْسَ مِنكُمْ رَجُلٌ رَشِيدٌ﴾

"(Wextê haya miletê wî ji mêvanê wî çêbû) bi lez hatine cem Lût, beriya wê hingê jî wan nebaşî dikirin. Vêca Lût ji wan re got: Hey miletê min, ev keçikên min ji bo we ji van mêvanan paqijtir in. Vêca ji Xwedê bitirsin û min di nav mêvanê min de şermezar nekin. Erê qey kesekî têbigihêje û bi aqil di nav we de tune?"[1]

٧٠٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (مَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَاليَومِ الآخِرِ فَلْيُكْرِمْ ضَيْفَهُ، وَمَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَاليَومِ الآخِرِ فَلْيَصِلْ رَحِمَهُ، وَمَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَاليَوْمِ الآخِرِ فَلْيَقُلْ خَيْراً أَوْ لِيَصْمُتَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

706- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wiha gotiye: "Kî bi Xwedê û roja axîretê bawer dike bila qedrê mêvanê xwe bigire, kî bi Xwedê û roja axîretê bawer dike bila sileyê rehmê bike (yanî bila ji mirovê xwe têkiliya xwe nebire) û kî bi Xwedê û roja axîretê bawer dike bila ya qenc bêje an jî bila xwe kerr bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٠٧- وَعَنْ أَبِي شُرَيْح خُوَيْلِدِ بْنِ عَمْرو الْخُزَاعِيِّ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (مَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَاليَوْمِ الآخِرِ فَلْيُكْرِمْ ضَيْفَهُ جَائِزَتَهُ) قَالُوا: وَمَا جَائِزَتُهُ يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: (يَوْمُهُ وَلَيْلَتُهُ، وَالضِّيَافَةُ ثَلَاثَةُ أَيَّامٍ، فَمَا كَانَ وَرَاءَ ذلِكَ فَهُوَ صَدَقَةٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

وفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: (لَا يَحِلُّ لِمُسْلِمٍ أَنْ يُقِيمَ عِنْدَ أَخِيهِ حَتَّى يُؤْثِمَهُ) قَالُوا: يَا رَسُولَ الله، وكَيْفَ يُؤْثِمُهُ؟ قَالَ: (يُقِيمُ عِنْدَهُ وَلَا شَيْءَ لَهُ يُقْرِيهِ بِهِ).

707- Ji Ebû Şureyh Xuweylidê kurê 'Emrê Xuza'î (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Kî bi Xwedê û roja axîretê bawer dike bila qedrê mêvanê xwe (yê ca'izeta xwe) bigire." Sehabiyan gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Ca'izeta wî çi ye? Ewî (s.) got: "Roj û şeva wî ye. Mêvanî sê roj e, piştî wê ji bo xwediyê malê dibe sedeqe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 Hûd, 11/78.

  

Di rîwayeteke Muslim de: “Ji bo misilman ne helal e ku li cem birayê xwe heta wî têxe gunehan bimîne.” Eshabiyan gotin: Ya Pêxemberê Xwedê, dê çawa ewî gunehkar bike? Ewî (s.) got: “Li cem birayê xwe bimîne û tu tiştekî birayê wî jî tunebe ku qedrê wî bigire.”

## بَابُ إِسْتِحْبَاب التَّبْشِيرِ
## MIZGÎNIYA BAŞIYÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿فَبَشِّرْ عِبَادِ ۞ الَّذِينَ يَسْتَمِعُونَ الْقَوْلَ فَيَتَّبِعُونَ أَحْسَنَهُ﴾

“Vêca mizgîniyê bide bendeyê min. Ewên ku guh didine axaftinan û li dûv ya çêtir diçin.”[1]

﴿يُبَشِّرُهُمْ رَبُّهُمْ بِرَحْمَةٍ مِنْهُ وَرِضْوَانٍ وجَنَّاتٍ لَهُمْ فِيهَا نَعِيمٌ مُقِيمٌ﴾

“Rebbê wan bi dilovaniya ji bal xwe, bi razîbûn û bi cenneta ji bo wan xweşî tê de berdewam e, mizgîniyê dide wan.”[2]

﴿وَأَبْشِرُوا بِالْجَنَّةِ الَّتِي كُنْتُمْ تُوعَدُونَ﴾

“Mizgînî ji were be! Soza Cennet ji were hatiye dayin.”[3]

﴿فَبَشَّرْنَاهُ بِغُلامٍ حَلِيمٍ﴾

“Vêca me mizgîniya kurikekî nerm û helîm dayê.”[4]

﴿وَلَقَدْ جَاءَتْ رُسُلنَا إِبْرَاهِيمَ بِالْبُشْرَى﴾

“Qasidên me bi mizgînî hatine cem Îbrahîm.”[5]

﴿وَإِمْرَأَتهُ قَايِمَةٌ فَضَحِكَتْ فَبَشَّرْنَاهَا بِإِسْحَاقَ وَمِنْ وَرَاءِ إِسْحَاقَ يَعْقُوبَ﴾

“Kevaniya Îbrahîm li piya rawestiyayî bû, vêca keniya. Me mizgîniya welidîna Îshaq dayê û wê ji Îshaq re kurek çêbe navê wî Ye‘qûb e.”[6]

﴿فَنَادَتْهُ الْمَلَايِكَةُ وَهُوَ قَايِمٌ يُصَلِّي فِي الْمِحْرَابِ أَنَّ اللَّهَ يُبَشِّرُكَ بِيَحْيَى﴾

---

1 Zumer, 30/17-18.
2 Tewbe, 9/21.
3 Fussîlet, 41/30.
4 Seffat, 37/101.
5 Hûd, 11/69.
6 Hûd, 11/71.

“Vêca milyaketan gazî kirê û ew di mîhrabê de li ser nimêjê rawestiyayî bû, gotinê: Xwedê mizgîniya Yehya dide te.”[1]

﴿إِذْ قَالَتِ الْمَلَائِكَةُ يَا مَرْيَمُ إِنَّ اللَّهَ يُبَشِّرُكِ بِكَلِمَةٍ مِنْهُ اسْمُهُ الْمَسِيحُ﴾

“Di wê gavê de milyaketan got: Meryemê, bi rastî Xweda mizgîniya peyveka xwe dide te, navê wî Mesîh e.”[2]

٧٠٨- عَنْ أَبِي إِبْرَاهِيمَ، وَيُقَالُ: أَبُو مُحَمَّدٍ، وَيُقَالُ: أَبُو مُعَاوِيَةَ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ أَبِي أَوْفَى ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ بَشَّرَ خَدِيجَةَ ﷺ، بِبَيْتٍ فِي الْجَنَّةِ مِنْ قَصَبٍ، لَا صَخَبَ فِيهِ وَلَا نَصَبَ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

708- Ji Ebû Îbrahîm, Ebû Muhemmed jî tê gotin, Ebû Mu‘awiye jî tê gotin, ‘Ebdullahê kurê Ebî Ewfa (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) mizgîniya malekî ji durr û cewheran di cennetê de da Xedîceyê ku di wê malê de ne xirecir û ne jî tê de westandin heye. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٠٩- وَعَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ أَنَّهُ تَوَضَّأَ فِي بَيْتِهِ، ثُمَ خَرَجَ فَقَالَ: لأَلْزَمَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ وَلأَكُونَنَّ مَعَهُ يَوْمِي هَذَا، فَجَاءَ المَسْجِدَ، فَسَأَلَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ فَقَالُوا: وَجَّهَ هَاهُنَا، قَالَ: فَخَرَجْتُ عَلَى أَثَرِهِ أَسْأَلُ عَنْهُ، حَتَّى دَخَلَ بِئْرَ أَرِيسٍ، فَجَلَسْتُ عِنْدَ الْبَابِ حَتَّى قَضَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ حَاجَتَهُ وتَوَضَّأَ، فَقُمْتُ إِلَيْهِ، فَإِذَا هُوَ قَدْ جَلَسَ عَلَى بِئْرِ أَرِيسٍ، وَتَوَسَطَ قُفَّهَا، وَكَشَفَ عَنْ سَاقَيْهِ وَدَلاهُمَا فِي البِئْرِ، فَسَلَّمْتُ عَلَيْهِ ثُمَّ انْصَرَفْتُ، فَجَلَسْتُ عِنْدَ البَابِ فَقُلْتُ: لأَكُونَنَّ بَوَّابَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ اليَوْمَ، فَجَاءَ أَبُو بكرٍ فَدَفَعَ البَابَ، فَقُلْتُ: مَنْ هذَا؟ فَقَالَ: أَبُو بَكْرٍ، فَقُلْتُ: عَلَى رِسْلِكَ، ثُمَّ ذَهَبْتُ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ، فَقُلْتُ: يا رَسُولَ اللَّهِ، هذَا أَبُو بكرٍ يَسْتَأْذِنُ؟ فَقَالَ: (ائْذَنْ لَهُ وَبَشِّرْهُ) بِالجَنَّةِ فَأَقْبَلْتُ حَتَّى قُلْتُ لأبِي بَكْرٍ: ادْخُلْ ورَسُولُ الله يُبَشِّرُكَ بِالجَنَّةِ، فَدَخَلَ أَبُو بَكْرٍ فَجَلَسَ عَنْ يَمِينِ النَّبِيِّ ﷺ مَعَهُ فِي القُفِّ، وَدَلَّى رِجْلَيْهِ فِي البِئْرِ، كَما صَنَعَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَكَشَفَ عَنْ سَاقَيْهِ، ثُمَّ رَجَعْتُ وَجَلَسْتُ، وَقَدْ تَرَكْتُ أَخِي يَتَوَضَّأُ وَيَلْحَقُنِي، فَقُلْتُ: إِنْ يُرِدِ الله بِفُلَانٍ - يُرِيدُ أَخَاهُ -

1 Alî ‘Îmran, 3/39.
2 Alî ‘Îmran, 3/45.

  

خَيْراً يَأْتِ بِهِ، فَإِذَا إِنْسَانٌ يُحَرِّكُ البَابَ، فَقُلْتُ: مَنْ هَذَا؟ فَقَالَ: عُمَرُ بْنُ الخَطَّابِ، فَقُلْتُ: عَلَى رِسْلِكَ، ثُمَّ جِئْتُ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَسَلَّمْتُ عَلَيْهِ وَقُلْتُ: هذا عُمَرُ يَسْتَأْذِنُ، فَقَالَ: (ائْذَنْ لَهُ وَبَشِّرْهُ بِالجَنَّةِ) فَجِئْتُ عُمَرَ، فَقُلْتُ: أَذِنَ، وَيُبَشِّرُكَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِالجَنَّةِ، فَدَخَلَ فَجَلَسَ مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي القُفِّ عَنْ يَسَارِهِ، وَدَلَّى رِجْلَيْهِ فِي البِئْرِ، ثُمَّ رَجَعْتُ فَجَلَسْتُ فَقُلْتُ: إِنْ يُرِدِ الله بِفُلان خَيْراً - يَعْنِي أَخَاهُ -يَأْتِ بِهِ، فَجَاءَ إِنْسَانٌ فَحَرَكَ البَابَ، فَقُلْتُ: مَنْ هذا؟ فَقَالَ: عُثْمَانُ بنُ عَفَّانَ، فَقُلْتُ: عَلَى رِسْلِكَ، وَجِئْتُ النَّبِيَّ ﷺ فَأَخْبَرْتُهُ فَقالَ: (ائْذَنْ لَهُ وَبَشِّرْهُ بِالجَنَّةِ مَعَ بَلْوَى تُصِيبُهُ) فَجِئْتُ فَقُلْتُ: ادْخُلْ وَيُبَشِّرُكَ رَسُولُ اللَّهِ، بِالْجَنَّةِ مَعَ بَلْوَى تُصِيبُكَ، فَدَخَلَ فَوَجَدَ القُفَّ قَدْ مُلِيءَ، فَجَلَسَ وُجَاهَهُمْ مِنَ الشِّقِّ الآخَرِ. قَالَ سعيدُ بنُ الْمُسَيَّبِ: فَأَوَّلْتُهَا قُبُورَهُمْ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَزَادَ فِي رِوَايَةٍ: (وَأَمَرَنِي رَسُولُ اللَّهِ بِحِفْظِ البَابِ. وَفِيها: أَنَّ عُثْمَانَ حِينَ بَشَّرَهُ حَمِد الله تَعَالَى، ثُمَّ قَالَ: الله المُسْتَعَانُ.

709- Ji Ebû Mûsa yê Eş'erî (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî di mala xwe de destnimêj girt, paşê ji mal derket û got: Ez îro ji Pêxemberê Xwedê (s.) naqetim û ezê îro digel wî (s.) bim. Vêca hate mizgeftê, pirsiyara pêxember (s.) kir. Eshabiyan jî gotin: Vî aliyê hanê ve çû (aliyê Qubayê ve). (Ebû Mûsa) dibêje: Min jî dewsa wî (s.) taqîb kir û pirsa wî kir heta daxilî bîra Erîsê bû. Ez li ber derî rûniştim heta Pêxemberê Xwedê (s.) hewceya xwe pêk anî û destnimêj girt. Ez hatim cem, min lê nihêrî ew (s.) li ser kevirê dora bîra Erîsê yê di navberê de rûniştiye, her du teşkên xwe vekirine û dahelandine bîrê de. Min silav lê kir, paşê ez zivirîm, li ber derî rûniştim û min got: Ezê îro bibime dergevanê Pêxemberê Xwedê (s.). Ebû Bekirê Siddîq (r.) hat li derî da, min got: Ew kî ye? Got: Ebû Bekir. Min got: Ka tu hinekî bisekine. Ez çûme bal Pêxemberê Xwedê (s.) û min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ebû Bekir hatiye destûrê dixwaze. Ewî (s.) got: "Tu destûra wî bide û mizgîniya cennetê bidiyê." Vêca ez zivirîm û min ji Ebû Bekir re got: Bikeve hundir. Pêxemberê Xwedê (s.) mizgîniya cennetê da te. Ebû Bekir (r.) kete hundir, li aliyê rastê Pêxemberê Xwedê (s.) û bi wî (s.) re di dîka bîrê de rûnişt û her du lingê xwe jî wekî yê Pêxemberê Xwedê (s.) dahelande bîrê û her du teşkên xwe jî vekirin. Paşê ez vegeriyame ciyê

xwe û rûniştim. (Wextê ez ji mal derketim) birayê min destnimêj digirt, wê bihata bigihîşta min. Vêca min ji xwe re got: Heger Xwedê xêra filan kesê –qesda birayê xwe dike– bixwaze wê ewî bîne vê derê. Di wê demê de min dît însanekî derî hejand. Min got: Ew kî ye? Got: ‘Umerê kurê Xettab. Min got: Ka tu hinekî bisekine. Ez çûme bal Pêxemberê Xwedê (s.), min silav lê kir û min got: Ya Pêxemberê Xwedê! ‘Umer hatiye destûrê dixwaze. Ewî (s.) got: “Tu destûra wî bide û mizgîniya cennetê bidê.” Vêca ez hatime cem ‘Umer û min jê re got: Pêxemberê Xwedê (s.) destûra te da û mizgîniya cennetê jî da te. ‘Umer (r.) kete hundir, li aliyê çepê Pêxemberê Xwedê (s.) di dîka bîrê de rûnişt û her du lingê xwe jî dahelande bîrê. Paşê ez vegeriyame ciyê xwe, rûniştim û min ji xwe re got: Heger Xwedê xêra filan kesê –yanî birayê wî– bixwaze wê ewî bîne vê derê. Di wê demê de min dît însanekî derî hejand. Min got: Ew kî ye? Got: Osmanê kurê ‘Effan. Min got: Ka tu hinekî bisekine. Ez çûme bal Pêxemberê Xwedê (s.), min ew agahdar kir û ewî (s.) got: “Tu destûra wî bide û digel bela û musîbetê ku wê werine serê wî mizgîniya cennetê bidiyê.” Vêca ez hatim û min jê re got: Bikeve hundir û Pêxemberê Xwedê (s.) digel bela û musîbetê ku wê werine serê te mizgîniya cennetê dide te. Vêca Osman (r.) kete hundir, lê nihêrî ku dîka bîrê tijî bûye, li aliyê din pêşberî wan rûnişt.

Se‘îdê kurê Museyyeb got: Ez şeklê vê rûniştina wan li gor wan şîrove dikim. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*[1]

Di rîwayetekê de ev zêde bûye: “Pêxemberê Xwedê (s.) emrê min kir ku ez li ber derî bisekinim.” Di wê rîwayetê de ev jî wiha ye: Wextê mizgîniya cennetê da Osman, ewî (r.) hemdê Xwedê te‘ala kir û got: Arîkarê min her Xwedê ye.

٧١٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: كُنَّا قُعُوداً حَوْلَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَمَعَنَا أَبُو بَكْرٍ وَعُمَرُ، فِي نَفَرٍ، فَقَامَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ مِنْ بَيْنِ أَظْهُرِنَا، فَأَبْطَأَ عَلَيْنَا، وَخَشِينا أَنْ يُقْتَطَعَ دُونَنَا، وَفَزِعْنَا فَقُمْنَا، فَكُنْتُ أَوَّلَ مَنْ فَزِعَ، فَخَرَجْتُ أَبْتَغِي رَسُولَ اللَّهِ ﷺ حَتَّى أَتَيْتُ حَائِطاً لِلأَنْصَارِ لِبَنِي النَّجَّارِ، فَدُرْتُ بِهِ هَلْ أَجِدُ لَهُ بَاباً، فَلَمْ أَجِدْ، فَإِذَا رَبِيعٌ يَدْخُلُ فِي جَوْفِ حَائِطٍ مِنْ بِئْرٍ خَارِجَةٍ ـ وَالرَّبِيعُ: الجَدْوَلُ الصَّغِيرُ ـ فَاحْتَفَزْتُ، فَدَخَلْتُ عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ:

1 Diyar e ku Pêxemberê Xwedê (s.), Ebû Bekirê Siddîq û Îmamê ‘Umer (r.) di qebrê de digel hev in. Lêbelê Îmamê Osman (r.) di goristana Beqî‘ de ye.

(أَبُو هُرَيْرَةَ) فَقُلْتُ: نَعَم يَا رَسُولَ الله، قَالَ: (مَا شَأْنُكَ) قلتُ: كُنْتَ بَيْنَ اَظْهُرِنَا فَقُمْتَ فَأَبْطَأْتَ عَلَيْنَا، فَخَشِينَا أَنْ تُقْتَطَعَ دُونَنَا فَفَزِعْنَا، فَكُنْتُ أَوَّلَ مَنْ فَزِعَ، فَأَتَيْتُ هذَا الحَائِطَ، فَاحْتَفَرْتُ كَمَا يَحْتَفِرُ الثَّعْلَبُ، وَهَؤُلَاءِ النَّاسُ وَرَائِي، فَقَالَ: (يَا أَبَا هُرَيْرَةَ) وَأَعْطَانِي نَعْلَيْهِ فَقَالَ: (اذْهَبْ بِنَعْلَيَّ هاتَيْنِ، فَمَنْ لَقِيتَ مِنْ وَرَاءِ هَذَا الحَائِطِ يَشْهَدُ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا الله مُسْتَيْقِناً بِهَا قَلْبُهُ، فَبَشِّرْهُ بالجَنَّةِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

710- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Em li dora Pêxemberê Xwedê (s.) rûniştibûn û bi me re Ebû Bekir û 'Umer (r.) jî bi hinek mirovên din ve rûniştibûn. Pêxemberê Xwedê (s.) ji nav me rabû û çû û paşdehatina wî (s.) bi derengî ket. Em tirsiyan ku tiştek hatibe serê wî (s.), em ketin teşqelê û em rabûn. Yê pêşiyê tirsiya jî ez bûm. Ez derketim û li Pêxemberê Xwedê (s.) geriyam, heta ez hatim cem sûreke êla Benî Neccaran ji Ensariyan. Ez li dora wê zivirîm ka ez derîkî nabînim? Min lê nihêrî ku ji bîreke derve cuweka avê dikete nava bostan. Min xwe qurmiçand û ez çûme cem Pêxemberê Xwedê (s.). Ewî (s.) got: "Ebû Hureyre tu yî?" Min got: Belê, ya Pêxemberê Xwedê. Got: "Tu çi dikî?" Min got: Tu di nav me de bûy, tu rabûy û çûy, hatina te jî bi derengî ket, em tirsiyan ku tiştek hatibe serê te û em ketine teşqelê. Yê pêşî jî tirsiya ez bûm. Ez hatime cem vî dîwarî mîna roviyan min xwe çiviland (da ku ez derbas bibim). Mirov jî pey min in. Veca Pêxemberê Xwedê (s.) her du pêlavên xwe dane min û got: "Ebû Hureyre! Tu van her du pêlavên min bibe, pişt vî dîwarî kî li rastî te were û bi can û dil bêje "La îlahe îllellah" tu mizgîniya cennetê bidiyê." *Muslim rîwayet kiriye.*

٧١١- وَعَنْ اِبْنِ شَمَاسَةَ قَالَ: حَضَرْنَا عَمْرَو بْنَ الْعَاصِ ﷺ وَهُوَ فِي سِيَاقَةِ المَوْتِ فَبَكَى طَوِيلاً، وَحَوَّلَ وَجْهَهُ إِلَى الْجِدَارِ، فَجَعَلَ اِبْنُهُ يَقُولُ: يَا أَبَتَاهُ أَمَا بَشَّرَكَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِكَذَا؟ أَمَّا بَشَّرَكَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِكَذَا؟ فَأَقْبَلَ بِوَجْهِهِ فَقَالَ: إِنَّ أَفْضَلَ مَا نُعِدُّ شَهَادَةُ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا الله، وَأَنَّ مُحَمَّداً رسُولُ الله، إِنِّي قَدْ كُنْتُ عَلَى ثَلَاثَةِ أَطْبَاقٍ، لَقَدْ رَأَيْتُنِي وَمَا أَحَدٌ أَشَدَّ بُغْضاً لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ مِنِّي، وَلَا أَحَبَّ إِلَيَّ مِنْ أَنْ أَكُونَ قَدِ اسْتَمْكَنْتُ مِنْهُ فَقَتَلْتُهُ، فَلَوْ مُتُّ عَلَى تِلْكَ الحَالِ لَكُنْتُ مِنْ أَهْلِ النَّارِ، فَلَمَّا جَعَلَ الله الإِسْلَامَ فِي

قَلْبِي أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ فَقُلْتُ: ابْسُطْ يَمِينَكَ فَلأُبَايِعْكَ، فَبَسَطَ يَمِينَهُ، فَقَبَضْتُ يَدِي، فَقَالَ: (مَالَكَ يَا عَمْرُو؟) قُلْتُ: أَرَدْتُ أَنْ أَشْتَرِطَ قَالَ: (تَشْتَرِطُ مَاذَا؟) قُلْتُ: أَنْ يُغْفَرَ لِي، قَالَ: (أَمَا عَلِمْتَ أَنَّ الإِسْلَامَ يَهْدِمُ مَا كَانَ قَبْلَهُ، وَأَنَّ الْهِجْرَةَ تَهْدِمُ مَا كَانَ قَبْلَهَا، وَأَنَّ الحَجَّ يَهْدِمُ مَا كَانَ قَبْلَهُ؟) وَمَا كَانَ أَحَدٌ أَحَبَّ إِلَيَّ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَلَا أَجَلَّ فِي عَيْنِي مِنْهُ، وَمَا كُنْتُ أُطِيقُ أَنْ أَمْلأَ عَيْنِي مِنْهُ إِجْلَالاً لَهُ، وَلَوْ سُئِلْتُ أَنْ أَصِفَهُ مَا أَطَقتُ، لِأَنِّي لَمْ أَكُنْ أَمْلأُ عَيْنِي مِنْهُ، وَلَوْ مُتُّ عَلَى تِلْكَ الْحَالِ لَرَجَوْتُ أَنْ أَكُونَ مِنْ أَهْلِ الجَنَّةِ، ثُمَّ وَلِينَا أَشْيَاءَ مَا أَدْرِي مَا حَالِي فِيهَا، فَإِذَا أَنَا مُتُّ فَلَا تَصْحَبَنِّي نَائِحَةٌ وَلَا نَارٌ، فَإِذَا دفَنتمُونِي، فَشُنُّوا عَلَيَّ التُّرَابَ شَنًّا، ثُمَّ أَقِيمُوا حَوْلَ قَبْرِي قَدرَ مَا تُنحَرُ جَزورٌ، وَيُقْسَمُ لَحْمُهَا، حَتَّى أَسْتَأْنِسَ بِكُمْ، وَأَنظُرَ مَاذَا أُرَاجِعُ بِهِ رسُلَ رَبِّيْ. رَوَاهُ مُسْلِم.

711- Ji Ebû Şemase, got: Em hatin cem 'Emrê kurê As ku ew di sekerata mirinê de bû. Ew gelekî giriya û berê xwe vegerande dîwar. Vêca kurê wî got: "Yabo! Qey Pêxemberê Xwedê (s.) bi filan filan tiştî mizgînî neda te?" Vêca 'Emrê kurê As rûyê xwe zivirand û got: Baştirînê tiştê ku me ji bo axîreta xwe amade kiriye şehadeta bi vê ye ku; "ji xeynê Xwedê tu îlah tune û Hz. Muhemmed jî qasidê wî ye." Min sê merhele borandin. Min xwe didît ku tu kes ji min zêdetir ji Pêxemberê Xwedê (s.) nedienirî û tu tiştek hezjêkertir nebû bal min ji rast hatin û kuştina wî (s.). Heger ez li ser vê rewşê bimirama ezê bibûyama ji ehlê êgir. Vêca wextê Xwedê (hezjêkirina) Îslamê kire dilê min, ez hatim bal Pêxemberê Xwedê (s.) û min jê re got: Tu destê xwe dirêj bike da ku ez ehd û peymanê digel te bikim. Ewî (s.) destê xwe yê rastê dirêjî min kir, lê min destê xwe paş ve kişand. Ewî (s.) got: "'Emr! Çi dibe ji te?" Min got: Ez dixwazim şert bajom. Ewî (s.) got: "Şertê te çi ye?" Min got: Ez werime bexşandinê. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Çima tu nizanî ku Îslam tiştê beriya xwe dihedimîne? Û hîcret/koçberî gunehên beriya xwe dihedimîne? Û hec gunehên beriya xwe dihedimîne?" Êdî li cem min tu kes ji Pêxemberê Xwedê (s.) hezjêkertir nebû, di çavê min de tu kes ji wî (s.) meztir tunebû, ji ber mezinbûna wî (s.) min nedikarî ku ez tam lê binihêrim û eger ji min wesf û salixê wî bihata pirskirinê min nedikarî ku ez salixê wî bidim, lewra min tu car tam lê nenihêrîbû. Heger ez li ser wê rewşê bimirama hêvîdarbûm ku ez

  

bibûyama ji ehlê cennetê. Paşê ez tevlî hinek kiryara bûm, ez nizanim ka rewşa min wê çawa be? Wextê ez mirim bila bi min re ne lorandîker û ne jî agir be. Wextê we ez çal kirim xweliyê hêdî hêdî bavêjine ser min, paşê bi qasî serjêkirina hêstirekî û belavkirina goştê wê li dora gora min bisekinin ku bîna min bi we derkeve. Û da ku ez bifikirim ka ezê çawa qasidê Rebbê xwe pêşwazî bikim. *Muslim riwayet kiriye.*

## بَابُ وَدَاعِ الصَّاحِب
## XATIRXWESTIN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

(وَوَصَّى بِهَا إِبْرَاهِيمُ بَنِيهِ وَيَعْقُوبُ يَا بُنَيَّ إِنَّ اللَّهَ اصْطَفَى لَكُمُ الدِّينَ فَلَا تَمُوتُنَّ إِلَّا وَأَنْتُمْ مُسْلِمُونَ ۝ أَمْ كُنْتُمْ شُهَدَاءَ إِذْ حَضَرَ يَعْقُوبَ الْمَوْتُ إِذْ قَالَ لِبَنِيهِ مَا تَعْبُدُونَ مِنْ بَعْدِي قَالُوا نَعْبُدُ إِلَهَكَ وَإِلَهَ آبَائِكَ إِبْرَاهِيمَ وَإِسْمَاعِيلَ وَإِسْحَاقَ إِلَهاً وَاحِداً وَنَحْنُ لَهُ مُسْلِمُونَ) الْبَقَرَة۝١٣٢-۝١٣٣

"Îbrahîm bi vî dînî wesiyet li kurê xwe kir, Ye'qûb jî her wisa got: Kurê min, bêguman Xweda ev dîn ji bo we hilbijart, (hişyar bin) hûn nemisilman nemirin. Gelî Cihûyan, qey hûn hazir bûn wextê Ye'qûb li ber mirinê gote zarokê xwe: Piştî min hûnê çi îbadet bikin? Gotin: Emê dê bi îlahê te û îlahê bav û bapîrê te Îbrahîm, Îsmaîl û Îshak îbadet bikin, îlahekî bi tenê ye. Û em (bes) li ber fermana wî bi tenê ne."[1]

٧١٢- عَنْ زَيْدِ بْنِ أَرْقَمَ ﷺ قَالَ: قَامَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فِينَا خَطِيباً، فَحَمِدَ اللَّهَ، وَأَثْنَى عَلَيْهِ، وَوَعَظَ وَذَكَّرَ، ثُمَّ قَالَ: (أَمَّا بَعْدُ، أَلَا أَيُّهَا النَّاسُ إِنَّمَا أَنَا بَشَرٌ يُوشِكُ أَنْ يَأْتِيَ رَسُولُ رَبِّي فَأُجِيبَ، وَأَنَا تَارِكٌ فِيكُمْ ثقلَيْنِ: أَوَّلُهُمَا: كِتَابُ اللَهِ، فِيهِ الْهُدَى وَالنُّورُ، فَخُذُوا بِكِتَابِ اللَّهِ، واسْتَمْسِكُوا بِهِ) فَحَثَّ عَلَى كِتَابِ اللَّهِ، وَرَغَّبَ فِيهِ، ثُمَّ قَالَ: (وَأَهْلُ بَيْتِي أُذَكِّرُكُمُ اللَّهَ فِي أَهْلِ بَيْتِي). رَوَاهُ مُسْلِمٌ، وَقَدْ سَبَقَ بِطُولِهِ.

---

1 Beqere, 2/132-133.

712- Ji Zeydê kurê Erqem (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) di nav me de rabû ku xutbekê bixwîne. Vêca hemd û medhê Xwedê kir, we'z da, Xwedê bi bîr anî û paşê jî got: "Piştî van, gelî mirovan! Hûn bizanin ez jî bes beşerek im, nêzîke ku qasidê Rebbê min were û ez jî bersîva wî bidim. Ez du giraniyan ji we re dihêlim. Ji wan her duyan ya yekem kitêba Xwedê ye. Di wê de hîdayet û ronahî heye. Hûn kitêba Xwedê bi kîp bigrin." Ewî (s.) teşwîq û daxwaza me kir li ser kitêba Xwedê. Paşê jî got: "Ya duyem jî ehlê beyta min e. Ez we di derbarê ehlê beyta xwe de Xwedê te'ala bi we bi bîr dixim." *Muslim rîwayet kiriye.* Ev hedîs bi dirêjî derbas bûye.

٧١٣- وَعَنْ أَبِي سُلَيْمَانَ مَالِكِ بْنِ الحُوَيْرِثِ ﷺ قَالَ: أَتَيْنَا رَسُولَ اللَّهِ ﷺ وَنحْنُ شَبَبَةٌ مُتَقَارِبُونَ، فَأَقَمْنَا عِنْدَهُ عِشْرِينَ لَيْلَةً، وَكَانَ رَسُولُ الله رَحِيماً رَفِيقاً، فَظَنَّ أَنَّا قَدِ اشْتَقْنَا أَهْلَنَا، فَسَأَلَنَا عَمَّنْ تَرَكْنَا مِنْ أَهْلِنَا، فَأَخْبَرْنَاهُ، فَقَالَ: (ارْجِعُوا إِلَى أَهْلِيكم، فَأَقِيمُوا فِيهِمْ، وَعَلِّمُوهُم وَمُرُوهُمْ، وَصَلُّوا صَلَاةَ كَذَا فِي حِينِ كَذَا، وَصَلُّوا كَذَا فِي حِينِ كَذَا، فَإِذَا حَضَرَتِ الصَّلاةُ فَلْيُؤَذِّنْ لَكُمْ أَحَدُكُمْ، وَلْيَؤُمَّكُم أَكبَرُكُمْ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

زَادَ الْبُخَارِيُّ فِي رِوَايَةٍ لَهُ: (وَصَلُّوا كَمَا رَأَيْتُمُونِي أُصَلِّي)

713- Ji Ebû Suleyman Malikê kurê Huweyris (r.), got: Em çend xortên hevsal hatine cem Pêxemberê Xwedê (s.) û bîst şevan em li cem wî (s.) sekinîn. Pêxemberê Xwedê (s.) xwedanmerhamet û pir bêhnfireh bû. Got, qey me bêriya mala xwe kiriye, vêca ji me pirsî ka me ji ehlê xwe kê li paş ve hiştiye? Me jî jê re salix da. Ewî (s.) got: "Hûn vegerine bal gelê xwe û di nav wan de bimînin. Hûn tiştên dînî hînî wan bikin û emrê wan bikin bi pekanîna wan tiştan. Filan nimêjê di filan wextê de û filan nimêjê jî di filan wextê de bikin. Wextê nimêjê hat bila yek ji we bang bide û bila pîrmendê we jî îmamiya we bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Buxarî di rîwayetekê de ev lê zêde kiriye: "Hûn nimêj bikin çawa ku hûn min dibînîn ez nimêj dikim."

٧١٤- وَعَنْ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ ﷺ قَالَ: اسْتَأْذَنْتُ النَّبِيَّ ﷺ فِي الْعُمْرَةِ، فَأَذِنَ، وَقَالَ: (لَا تَنْسَنَا يَا أُخَيَّ مِنْ دُعَائِكَ) فَقَالَ كَلِمَةً مَا يَسُرُّنِي أَنَّ لِي بِهَا الدُّنْيَا.

وَفِي رِوَايَةٍ قَالَ: (أَشْرِكْنَا يَا أُخَيَّ فِي دُعَائِكَ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

714- Ji ‘Umerê kurê Xettab (r.), got: Min ji bo umreyê ji Pêxemberê Xwedê (s.) destûr xwest, ewî jî destûr da û got: “Birayê min! Me jî ji duayê xwe bêpar nekin.” Rawî got: Pêxemberê Xwedê (s.) kelîmeke wisa got, temamê dunyayê jî ya min bûya ez wisa kêfxweş nedibûm.

Rîwayeteke dîtir de got: “Birayê min! Me jî bixne hevparê duayê xwe.” *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye ev hedîs hesen û sehîh e.*

٧١٥- وَعَنْ سَالِمِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ أَنَّ عَبْدَ الله بْنِ عُمَر ﷺ كَانَ يَقُولُ لِلرَّجُلِ إِذَا أَرَادَ سَفَراً: ادْنُ مِنِّي حَتَّى أُوَدِّعَكَ كَمَا كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُوَدِّعُنا، فَيَقُولُ: أَسْتَوْدِعُ الله دِينَكَ، وَأَمَانَتَكَ، وَخَوَاتِيمَ عَمَلِكَ. رَوَاهُ التِّرمِذِي، وقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

715- Ji Salimê kurê ‘Ebdullahê Îbnu ‘Umer hatiye rîwayetkirin ku ‘Ebdullahê Îbnu ‘Umer (r.) ji mirovekî ku yê derketa rêwîtiyê re digot: Tu nêzîkî min be da ku ez xatirê xwe ji te bixwazim mîna xatir xwestina Pêxemberê Xwedê (s.) ji me. Ewî (s.) (wextê xatir xwestinê de) digot: “Ez dînê te, sparteyê/emanetê te û dawiya kar û kiryarên te dispêrime Xwedê.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen û sehîh e.*

٧١٦- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ يَزِيدَ الْخَطْمِيِّ الصَّحَابِيِّ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ الله ﷺ إِذَا أَرَادَ أَنْ يُوَدِّعَ الْجَيْشَ قَالَ: (أَسْتَوْدِعُ الله دِينَكُمْ، وَأَمَانَتَكُم، وَخَوَاتِيمَ أَعْمَالِكُمْ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَغَيْرُه بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

716- Ji ‘Ebdullahê kurê Yezîd el-Xatmiyy es-Sehabî (r.), got: Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) ji leşker xatir dixwest wiha digot: “Ez dînê we, sparteyê/emanetê we û dawiya kar û kiryarên we dispêrime Xwedê.” *Hedî seke sehîh e. Ebû Dawûd û xeynê wî bi senedeke sehîh rîwayet kirine.*

٧١٧- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: جَاءَ رجُلٌ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنِّي أُرِيدُ سَفَراً، فَزَوِّدْني، فقَالَ: (زَوَّدَكَ الله التَّقْوَى) قَالَ: زِدْنِي، قَالَ: (وَغَفَرَ ذَنْبَكَ) قَالَ: زِدْني، قَالَ: (وَيَسَّرَ لَكَ الْخَيْرَ حَيْثُما كُنْتَ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

717- Ji Enes (r.), got: Mirovek hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û got: Ya Pêxemberê Xwedê! Dilê min heye ku ez derkevime rêwîtiyê, zewadekê bide min. Ewî (s.) got: “Xwedê te‘ala zewadeya teqwatiyê bide te.” Ewî mirovî got: Ji min re zêde bike. Ewî (s.) got: “Xwedê te‘ala gunehê te bibexşîne.” Ewî mirovî got: Ji min re zêde bike. Ewî (s.) got: “Tu li kuderê bî Xwedê ji te re xêrê hêsan bike.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

## بَابُ الإِسْتِخَارَةِ وَالْمُشَاوَرَةِ
## ÎSTIXARE Û ŞÊWIRÎN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَشَاوِرْهُمْ فِي الأَمْرِ﴾

“Tu di kar û kiryaran de bi wan bişêwire.”[1]

﴿وَأَمْرُهُمْ شُورَى بَيْنَهُمْ﴾

“Kar û kiryarên wan bi şêwra di navbera wan de ye.”[2]

٧١٨- عَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُعَلِّمُنَا الإِسْتِخَارَةَ فِي الأُمُورِ كُلِّهَا كَالسُّورَةِ مِنَ القُرْآنِ، يَقُولُ: (إِذَا هَمَّ أَحَدُكُمْ بِالأَمْرِ، فَلْيَرْكَعْ رَكْعَتَيْنِ مِنْ غَيْرِ الْفَرِيضَةِ، ثُمَّ لِيَقُلْ: اللَّهُمَّ إِنِّي أَسْتَخِيرُكَ بِعِلْمِكَ، وَأَسْتَقْدِرُكَ بِقُدْرَتِكَ، وَأَسْأَلُكَ مِنْ فَضْلِكَ الْعَظِيمِ، فَإِنَكَ تَقْدِرُ وَلَا أَقْدِرُ، وَتَعْلَمُ وَلَا أَعْلَمُ، وَأَنْتَ عَلاَّمُ الْغُيُوبِ، اللَّهُمَ إِنْ كُنْتَ تَعْلَمُ أَنَّ هَذَا الأَمْرَ خَيْرٌ لِي فِي دِينِي وَمَعَاشِي وَعَاقِبَةِ أَمْرِي- أَوْ قَالَ: عَاجِلِ أَمْرِي وَآجِله- فَاقْدُرْهُ لِي ويَسِّرْهُ لِي، ثُمَّ بَارِكْ لِي فِيهِ، وَإِنْ كُنْتَ تَعْلَمُ أَنَّ هَذَا الأَمْرَ شرٌّ لِي فِي دِينِي وَمَعَاشِي وَعَاقِبَةِ أَمْرِي- أَوْ قَالَ: عَاجِلِ أَمْرِي وَآجِلِه- فَاصْرِفْهُ عَنِّي، وَاصْرِفْنِي عَنْهُ، وَاقْدُرْ لِيَ الْخَيْرَ حَيْثُ كَانَ، ثُمَّ رضِنِي بِهِ) قَالَ: (وَيُسَمِّي حَاجَتَهُ). رَوَاهُ البُخَارِي.

718-Ji Cabirê kurê ‘Ebdullah (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wekî

1 Alî ‘Îmran, 3/159.
2 Şûra, 42/38.

  

sûretekî Qur'anê di hemû kiryaran de îstixare hînî me dikir û wiha digot: "Wextê yek ji we bixwaze tiştekî bike bila pêşyê ji xeynê nimêja ferz du rekat nimêj bike û bila paşê bêje: Xwedayo! Ez bi zanebûna te daxwaza xêrê, bi qudreta te, daxwaza pêkanînê ji te dikim û ji te fedla te ya mezin dixwazim. Lewra tu dikarî ez nikarim, tu dizanî ez nizanim û tu zanayê tiştê ne hazir î jî. Xwedayo! Heger tu dizanî ev kar û kiryar ji min re di derbarê dînê min, dunya min û dawiya kiryarê min de qenc e." Û yan jî wiha got: "Pêşî û paşiya di kiryarên min de (qenc e), tu wî ji min re muqedder û muyesser bikî û paşê jî tu ji min re mubarek bikî. Heger tu dizanî ev kar û kiryar di derbarê dînê min, dunya min û dawiya kiryarên min de xerab e," yan jî got: "Pêşî û paşiya di kiryarê min de (xerab e), tu wî ji min dûr bike û min jî ji wî dûr bike, xêr li kuderê be tu ji min re muqedder bikî, paşê jî tu min bi wî dilxweş bikî. Paşê jî ew mirovê îstixare dike hewceya xwe dibêje." *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ اِسْتِحْبَابِ الذَّهَابِ إِلَى الْعِيدِ وَعِيَادَةِ الْمَرِيضِ
## ÇÛYINA CEJNA Û SERLÊDANA NEXWEŞA

٧١٩- عَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ إِذَا كَانَ يَوْمُ عِيدٍ خَالَفَ الطَّرِيقَ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

719-Ji Cabir (r.), got: Pêxember (s.) roja 'eydê rêya xwe diguherand. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٧٢٠- وَعَنْ اِبْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ كَانَ يخْرُجُ مِنْ طَرِيقِ الشَّجَرَةِ، وَيَدْخُلُ مِنْ طَرِيقِ المُعَرَّسِ، وَإِذَا دَخَلَ مَكَّةَ دَخَلَ مِنَ الثَّنِيَّةِ الْعُلْيَا وَيَخْرُجُ مِنَ الثَّنِيهِ السُّفْلَى. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

720- Ji 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) ji Medîneyê di aliyê Şecerê de derdiket û di aliyê Muerrisê jî dikete hundir. Vêca wextê biketa Mekkeyê ji aliyê Seniyya jorê ve diketê, wextê jê derketa ji aliyê Seniyya jêrê ve derdiket. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ تَقْدِيمِ الْيَمِين
## TIŞTÊN BAŞ DE DESTPÊKIRINA JI ALIYÊ RASTÊ VE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

(فَأَمَّا مَنْ أُوتِيَ كِتَابَهُ بِيَمِينِهِ فَيَقُولُ هَاؤُمُ اقْرَءُوا كِتَابِيَهْ) الْحَاقَّة١٩

"Ewê ku kitêba kar û kiryarên xwe bi destê rastê werdigire bi kêf dibêje: Kerem bikin kitêba min bixwînin."[1]

(فَأَصْحَابُ الْمَيْمَنَةِ مَا أَصْحَابُ الْمَيْمَنَةِ ۝ وَأَصْحَابُ الْمَشْأَمَةِ مَا أَصْحَابُ الْمَشْأَمَةِ) الْوَاقِعَة٨-٩

"Ma xwedanê mile çepê kî ne û xwedanê mile rastê kî ne?"[2]

٧٢١- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُعْجِبُهُ التَّيَمُّنُ فِي شَأْنِه كُلِّه: فِي طُهُورِهِ، وَتَرَجُّلِهِ، وتَنَعُّلِه. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

721- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) di hemû kiryarên xwe de; di paqijiyê, di por şehkirinê û di wergirtina solê de bi destpêkirina milê rastê kêfxweş dibû. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٢٢- وعَنْهَا قَالَتْ: كَانَتْ يَدُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ الْيُمْنى لِطُهُورِهِ وَطَعَامِهِ، وَكَانَتْ الْيُسْرَى لِخَلَائِهِ وَمَا كَانَ مِنْ أَذَىً. حَدِيثٌ صَحِيح رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَغَيْره بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

722- Dîsa ji wê (r.), got: Destê Pêxemberê Xwedê (s.) yê rastê di destnimêj û xwarinê de û yê çepê jî di destav û tiştê qirêj de bikêr dihat.
*Hedîs sehîh e. Ebû Dawûd û xeynê wî bi senedeke sehîh rîwayet kirine.*

٧٢٣- وَعَنْ أُمِّ عَطِيَّةَ ﵂ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ لَهُنَّ فِي غَسْلِ اِبْنَتِهِ زَيْنَبَ) أَبْدَأْنَ بِمَيَامِنِهَا وَمَوَاضِعِ الْوُضُوءِ مِنْهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

723- Ji Ummu 'Etiyye (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) di şûştina keça xwe Zeynebê de (r.) ji wan jinan re got: "Hûn bi kêleka wê ya rastê û

1 Heqqe, 69/19.
2 Waqi'e, 56/8-9.

bi azayên destnimêjê dest pê bikin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٢٤- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا انْتَعَلَ أَحَدُكُمْ فَلْيَبْدَأْ بِالْيَمِينِ، وَإِذَا نَزَعَ فَلْيَبْدَأْ بِالشِّمَالِ، لِتكُنِ الْيُمْنَى أَوَّلَهُما تُنْعَلُ، وآخِرَهُمَا تُنْزَعُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

724- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê yek ji we sola xwe wergire bila bi ya rastê dest pê bike. Û wextê sola xwe derxist bila bi ya çepê dest pê bike. Bila wextê wergirtinê lingê rastê bibe yê yekem û wextê xistinê jî bibe yê dawîn." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٢٥- وَعَنْ حَفْصَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَجْعَلُ يَمِينَهُ لِطَعَامِهِ وَشَرَابِهِ وَثِيَابِهِ، وَيَجْعَلُ يَسَارَهُ لِمَا سِوَى ذَلِكَ. رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَغَيْرُه.

725- Ji Hefse (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) destê xwe yê rastê ji bo xwarin, vexwarin û cil wergirtinê û destê xwe yê çepê jî ji bo xeynê vana bi kar dianî. *Ebû Dawûd û xeynê wî rîwayet kirine.*

٧٢٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا لَبِسْتُمْ، وَإِذَا تَوَضَّأْتُمْ، فَابْدَؤُوا بِأَيَامِنِكُمْ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرمِذِي. بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

726- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê we cil wergirt û we destnimêj girt bi rastê xwe dest pê bikin." *Hedîs sehîh e. Ebû Dawûd û Tirmizî bi senedeke sehîh rîwayet kirine.*

٧٢٧- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ أَتَى مِنىً، فَأَتَى الْجَمْرَةَ فَرَمَاهَا، ثُمَّ أَتَى مَنْزِلَهُ بِمِنى، وَنَحَرَ، ثُمَّ قَالَ لِلحَلَّاقِ: (خُذ) وَأَشَارَ إِلَى جَانِبِهِ الأَيْمَنِ، ثُمَّ الأَيْسَرِ، ثمَّ جَعَلَ يُعْطِيهِ النَّاسَ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: لَمَّا رَمَى الْجَمْرَةَ، وَنَحَرَ نُسُكَهُ وَحَلَقَ نَاوَلَ الْحَلَّاقَ شِقَّهُ الأَيْمَنَ فَحَلَقَهُ، ثُمَّ دَعَا أَبَا طَلْحَةَ الأَنصارِيَّ ﷺ فَأَعْطَاهُ إِيَّاهُ، ثُمَّ نَاوَلَهُ الشِّقَّ الأَيْسَرَ فَقَالَ: (احْلِقْ) فَحَلَقَهُ فَأَعْطَاهُ أَبَا طَلْحَةَ، فَقَالَ: (اقْسِمْهُ بَيْنَ النَّاسِ).

727- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) hate Mînayê hate cem Cemretul-'Eqebeyê cemre avêt (recim kir), paşê jî hate qonaxa xwe ya Mînayê qurban serjêkir. Piştre ji berber re kêleka serê xwe yê rastê, paşê jî yê çepê nîşan da û got: "Tu kurr bike." Dûre porê xwe li însanan belav kir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetekê de: Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) cemre kir, qurbana xwe serjêkir û xwest ku porê xwe kurr bike: Kêleka serê xwe ya rastê dirêjî berber kir, berber ew alî kurr kir, paşê Pêxemberê Xwedê (s.) gazî Ebû Telheyê Ensarî (r.) kir ew porê xwe dayê; piştre kêleka serê xwe ya çepê dirêjî berber kir û got: "Kurr bike." Vêca berber ew alî jî kurr kir. Pêxemberê Xwedê (s.) ew jî da Ebû Telhe (r.) û jê re got: "Evî di navbera însanan de belav bike."

# كِتَابُ أَدَابِ الطَّعَامِ
# KITÊBA EDEBA XWARINÊ

## بَابُ التَّسْمِيَة فِي أَوَّلِهِ وَالْحَمْد فِي آخِرِهِ
## DI DESTPÊKÊ DE BISMILLAH, DI DAWIYÊ DE ELHEMDULILLAH

٧٢٨- عن عُمَرَ بْنِ أَبِي سَلَمَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (سَمِّ الله وَكُلْ بِيَمِينِكَ، وَكُلْ مِمَّا يَلِيكَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

728- Ji ‘Umerê kurê Ebû Seleme (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: “Tu navê Xwedê bîne, bi destê xwe yê rastê û ji pêşiya xwe bixwe.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٢٩- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا أَكَلَ أَحَدُكُمْ فَلْيَذْكُرِ اِسْمَ الله تَعَالَى، فَإِنْ نَسِيَ أَنْ يَذْكُرَ اِسْمَ الله تَعَالَى فِي أَوَلِهِ، فَلْيَقُلْ: بِسْمِ اللَّهِ أَوَّلَهُ وَآخِرَهُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

729- Ji ‘Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê yekî ji we xwarin xwar bila navê Xwedê te‘ala bêje, îcar eger jibîr kir destpêkê de negot bila bêje: Bismillah di destpêk û dawiyê de.” *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye ev hedîs hesen û sehîh e.*

٧٣٠- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِذَا دَخَلَ الرَّجُلُ بَيْتَهُ، فَذَكَرَ اللَّهَ عِنْدَ دُخُولِهِ وَعِنْدَ طَعَامِهِ، قَالَ الشَّيْطَانُ لِأَصْحَابِهِ: لَا مَبِيتَ لَكُمْ وَلَا عَشَاءَ، وَإِذَا دَخَلَ، فَلَمْ يَذْكُرِ اللَّهَ تَعَالَى عِنْدَ دُخُولِهِ، قَالَ الشَّيْطَانُ: أَدْرَكْتُمُ الْمَبِيتَ، وَإِذَا لَمْ يَذْكُرِ اللَّهَ تَعَالَى عِنْدَ طَعَامِهِ قَالَ: أَدْرَكْتُمُ الْمَبِيتَ وَالْعَشَاءَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

730- Ji Cabir (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: “Wextê mirov çû mala xwe di gava ketina hundir û gava xwarin xwarinê de Xwedê bi bîr bîne şeytan ji hevalê xwe re dibêje: ‘Ji we re îro ne stare heye û ne jî xwarin.’ Û wextê ew mirov kete malê û di gava ketina hundir de navê Xwedê bi bîr neyîne şeytan (ji hevalê xwe re) dibêje: ‘Hûn xwedanstare bûn.’ Û di gava xwarinê de navê Xwedê bi bîr neyîne şeytan dibêje: ‘Hûn xwedanstare û xwedanşîv bûn.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٧٣١- وَعَنْ حُذَيْفَةَ ﷺ قَالَ: كُنَّا إِذَا حَضَرْنَا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ طَعَاماً، لَمْ نَضَعْ أَيْدِيَنَا حَتَّى يَبْدَأَ رَسُولُ اللَّهِ فَيَضَعُ يَدَهُ، وَإِنَّا حَضَرْنَا مَعَهُ مَرَّةً طَعَاماً، فَجَاءَتْ جَارِيَةٌ كَأَنَّهَا تُدْفَعُ، فَذَهَبَتْ لِتَضَعَ يَدَهَا فِي الطَّعَامِ، فَأَخَذَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِيَدِهَا، ثُمَّ جَاءَ أَعْرَابِيٌّ كَأَنَّمَا يُدْفَعُ، فَأَخَذَ بِيَدِهِ، فَقَالَ رَسُولُ: (إِنَّ الشَّيْطَانَ يَسْتَحِلُّ الطَّعَامَ أَنْ لَا يُذْكَرَ اسْمُ اللَّهِ تَعَالَى عَلَيْهِ، وَإِنَّهُ جَاءَ بِهَذِهِ الْجَارِيَةِ لِيَسْتَحِيَ بِهَا، فَأَخَذْتُ بِيَدِهَا، فَجَاءَ بِهَذَا الأَعْرَابِي لِيَسْتَحِلَّ بِهِ، فَأَخَذْتُ بِيَدِهِ، وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ إِنَّ يَدَهُ فِي يَدِي مَعَ يَدَيْهِمَا، ثُمَّ ذَكَرَ اسْمَ اللَّهِ وَأَكَلَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

731- Ji Huzeyfeyê kurê Yeman (r.), got: Wextê em digel Pêxemberê Xwedê (s.) dihatine ser xwarinê heta wî (s.) dest pê nekira û destê xwe dirêj nekira me beriya wî destê xwe dirêj nedikir. Vêca em carekê digel Pêxemberê Xwedê (s.) ser xwarinekê bûn. Cariyek hat her wekî dihate dehifandin (yanî bi lez hat) ku destê xwe dayine nav xwarinê de, Pêxemberê Xwedê (s.) bi destê wê girt (nehêla ku bixwe). Piştre mirovekî bedewî, ew jî her wekî dihate dehifandin, hat Pêxemberê Xwedê (s.) bi destê wî jî girt (nehêla ku bixwe). Û vêca Pêxember (s.) got: “Bêguman şeytan ew xwarina ku navê Xwedê li ser neyê gotin dipejirîne, îcar şeytan ev cariya hanê şand ku ew jê re vê xwarinê xweş bike. Min destê wê girt (nehêla). Û piştre ev bedewiyê hanê şand ku ew jê re vê xwarinê xweş bike. Min

destê wî jî girt (nehêla). Ez bi wî Xwedayê ku nefsa min destê wî de ye sond dixwim, destê şeytan jî digel destê wan her duyan nav destê min de bû." Paşê Pêxemberê Xwedê (s.) navê Xwedê anî (bismillah got) û dest bi xwarinê kir. *Muslim rîwayet kiriye.*

٧٣٢- وَعَنْ أُمَيَّةَ بْنِ مَخْشِيٍّ الصَّحَابِيِّ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ جَالِساً، وَرَجُلٌ يَأْكُلُ، فَلَمْ يُسَمِّ اللَّهَ حَتَّى لَمْ يَبْقَ مِنْ طَعَامِهِ إِلَّا لُقْمَةٌ، فَلَمَّا رَفَعَهَا إِلَى فِيهِ، قَالَ: بِسْمِ اللَّهِ أَوَّلَهُ وآخِرَهُ، فَضَحِكَ النَّبِيُّ، ثُمَّ قَالَ: (مَا زَالَ الشَّيْطَانُ يَأْكُلُ مَعَهُ، فَلَمَّا ذَكَرَ اسْمَ الله اسْتَقَاءَ مَا فِي بَطْنِهِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالنَّسَائِيُّ.

732- Ji Ûmeyyeyê kurê Mexşî yê Sehabî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) rûniştî bû, mirovekî jî xwarin dixwar, lê ewî mirovî navê Xwedê te'ala neanî heta ji xwarina wî parîk tenê ma. Wextê ew parî bire devê xwe got: 'Bismillah di destpêk û di dawiyê de.' Vêca Pêxember (s.) keniya û paşê jî got: "Şeytan jî digel wî dixwar, wextê wî navê Xwedê anî, şeytan xwarina zikê xwe vereşiya." *Ebû Dawûd û Nesaî rîwayet kirine.*

٧٣٣- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَأْكُلُ طَعَاماً فِي سِتَّةٍ مِنْ أَصْحَابِهِ، فَجَاءَ أَعْرَابِيٌّ، فَأَكَلَهُ بِلُقْمَتَيْنِ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَمَّا إِنَّهُ لَوْ سَمَّى لَكَفَاكُمْ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

733- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) digel şeş sehabiyên xwe xwarin dixwar. Vêca mirovekî bedewî hat û ew xwarin bi du pariyan xelas kir. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Heger wî mirovî navê Xwedê bigota, wê xwarin têra we bikira." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen û sehîh e.*

٧٣٤- وَعَنْ أَبِي أُمَامَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ إِذَا رَفَعَ مَائِدَتَهُ قَالَ: (الحَمْدُ لِلهِ حَمْداً كَثِيراً طَيِّباً مُبَارَكاً فِيهِ غَيْرَ مَكْفِيٍّ وَلَا مُوَدَّعٍ، وَلَا مُسْتَغْنىً عَنْهُ رَبَّنَا). رَوَاهُ البُخَارِي.

734- Ji Ebû Umame (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) wextê sifra xwe radikir wiha digot: *Elhemdu-lîllah hemden kesîren teyyîben mubareken fîhî xeyre mekfiyîn wela mustexnîn 'enhu* (Gelek hemdê pak, bi adan, bi temamî, neavêtî û bê hewceyî ji Xwedê re be.)" *Buxarî rîwayet kiriye.*

٧٣٥- وَعَنْ مُعَاذِ بْنِ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ أَكَلَ طَعَاماً، فَقَالَ: الْحَمْدُ لِلهِ الَّذِي أَطْعَمَنِي هَذَا، وَرَزَقَنِيهِ مِنْ غَيْرِ حَوْلٍ مِنِّي وَلَا قُوَّةٍ، غُفِرَ لَهُ مَا تَقَدَّمَ مِنْ ذَنْبِهِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

735-Ji Mu'azê kurê Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî xwarinê bixwe û bêje: Hemd ji wî Xwedayî re be ku ji bê hêz û quweta min ev xwarin daye min û xistiye rizqê min,' gunehê wî yê berê tê bexşandin." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye ev hedîs hesen e.*

## بَابُ لَا يعيب الطَّعَام

## LOMENEKIRINA XWARINÊ

٧٣٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: مَا عَابَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ طَعَاماً قَطُّ، إِنْ اشْتَهَاهُ أَكَلَهُ، وَإِنْ كَرِهَهُ تَرَكَهُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

736- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) tu car lome li xwarinê nedikir; eger dilê wî (s.) biçûyayê wê bixwara û eger jê hez nekira wê bihêla. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٣٧- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ سَأَلَ أَهْلَهُ الأَدْمَ فَقَالُوا: مَا عِنْدَنَا إِلَّا خَلٌّ، فَدَعَا بِهِ، فَجَعَلَ يَأْكُلُ وَيَقُولُ: (نِعْمَ الأَدْمُ الخَلُّ، نِعْمَ الأَدْمُ الخَلُّ). رَوَاهُ مُسْلِم.

737- Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) ji ehlê mala xwe xwarin xwest, lê ewan gotin li cem me sihik/sirke bi tenê heye. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) ew xwest, xwar û got: "Sihik xweş pêxwarin e, sihik xweş pêxwarin e." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ مَا يَقُولُه مَنْ حَضَرَ الطَّعَامَ وَهُوَ صَائِم

## GOTINA MERIVÊ BI ROJÎ WEXTÊ AMADEBÛNA XWARINÊ

٧٣٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا دُعِيَ أَحَدُكُمْ، فَلْيُجِبْ، فَإِنْ كَانَ صَائِماً فَلْيُصَلِّ، وَإِنْ كانَ مُفْطِراً فَلْيَطْعَمْ). رَوَاهُ مُسْلِم.

738- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Wextê yek ji we hate dawet kirin bila qebûl bike; eger bi rojî be bila nimêj bike (ango, dua bike) û eger nerojî be bila bixwe." *Muslim riwayet kiriye.*

## بَابُ مَا يَقُولُهُ مَنْ دُعِيَ إِلَى طَعَام فَتَبِعَهُ غَيْرُهُ

## GOTINA MIROVÊ WERE GAZÎKIRIN Û XEYNÊ WÎ JÎ BIBE TABI'Ê WÎ

٧٣٩- عَنْ أَبِي مَسْعُودٍ الْبَدْرِيِّ ﷺ قَالَ: دَعَا رَجُلٌ النَّبِيَّ ﷺ لِطَعَامٍ صَنَعَهُ لَهُ خَامِسَ خَمْسَةٍ فَتَبِعَهُمْ رَجُلٌ، فَلَمَّا بَلَغَ البَابَ، قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (إِنَّ هَذَا تَبِعَنَا، فَإِنْ شِئْتَ أَنْ تَأْذَنَ لَهُ، وَإِنْ شِئْتَ رَجَعَ) قَالَ: لَا بَلْ آذَنُ لَهُ يَا رَسُولَ الله. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

739- Ji Ebû Mes'ûdê Bedrî (r.), got: Mirovekî digel çar mirovan gazî Pêxemberê Xwedê (s.) jî kir ji bo xwarinê ku ji wî re çêkiribû. Lê mirovekî din jî li pey wan çû. Wextê ew gihîştine ber derî Pêxember (s.) ji xwediyê malê re got: "Ev mirovê hanê li pey me hat, eger tu hez bikî tu yê destûra wî bidî û eger tu hez nakî bila ew bizivire." Xwediyê malê got: Ya Pêxemberê Xwedê! Belê, ez destûra wî didim. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ الأَكْلِ مِمَّا يَلِيهِ

## XWARINA JI PÊŞIYA XWE

٧٤٠- عَنْ عُمَرَ بْنِ أَبِي سَلَمَةَ ﷺ قَالَ: كُنْتُ غُلَاماً فِي حِجْرِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَكَانَتْ يَدِي تَطِيشُ فِي الصَّحْفَةِ، فَقَالَ لِي رَسُولُ الله ﷺ: (يَا غُلَامُ سَمِّ الله تَعَالَى، وَكُلْ بِيَمِينِكَ، وَكُلْ مِمَّا يَلِيكَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

740- Ji 'Umerê kurê Ebî Seleme (r.), got: "Ez zarok bûm di mala Pêxemberê Xwedê (s.) de. Destê min dirêjî her aliyê firaxê dibû. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Zaroko! Tu navê Xwedê bîne, bi destê xwe yê rastê û ji pêşiya xwe bixwe." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٧٤١- وَعَنْ سَلَمَةَ بْنِ الأَكْوَعِ ﷺ أَنَّ رَجُلاً أَكَلَ عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ بِشِمَالِهِ، فَقَالَ: (كُلْ

بِيَمِينِكَ) قَالَ: لَا أَسْتَطِيعُ، قَالَ: (لَا اسْتَطَعْتَ مَا مَنَعَهُ إِلَّا الْكِبْرُ، فَمَا رَفَعَهَا إِلَى فِيهِ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

741- Ji Selemeyê kurê Ekwe' (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî li cem Pêxemberê Xwedê (s.) bi destê xwe yê çepê xwarin xwar. Vêca Pêxemberê Xwedê ji wî re got: "Bi destê xwe yê rastê bixwe." Ewî got: Ez nikarim. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bila qet tu nikaribî." Bes qurretiyê ew girtibû. Êdî ewî mirovî nikarî destê xwe bibe bal devê xwe ve. *Muslim rîwayet kiriye*

## بَابُ النَّهْيِّ عَنِ الْقِرَانِ بَيْنَ بَيْنَ تَمْرَتَيْنِ

## KERIHANDINA XWARINA DU XURMEYAN BI HEVDU RE

٧٤٢- عَنْ جَبَلَةَ بْنِ سُحَيْمٍ قَالَ: أَصَابَنَا عَامُ سَنَةٍ مَعَ ابْنِ الزُّبَيْرِ، فَرُزِقْنَا تَمْراً، وَكَانَ عَبْدُ اللهِ بْنِ عُمَرَ ﷺ يَمُرُّ بِنَا وَنَحْنُ نَأْكُلُ، فيَقُولُ: لَا تُقَارِنُوا، فَإِنَّ النَّبِيَّ ﷺ نَهَى عَنِ الإِقْرَانِ، ثُمَّ يَقُولُ: (إِلَّا أَنْ يَسْتَأْذِنَ الرَّجُلُ أَخَاهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

742- Ji Cebeleyê kurê Suheym got: Salekê digel 'Ebdullahê kurê Zubeyr tengasî li me peyda bû û me hinek xurme bi dest xist. Û 'Ebdullahê Îbnu 'Umer (r.) di ber me re derbas dibû û me jî xurme dixwarin. Ewî (r.) got: Hûn du xurmeyan bi hevdu re nexwin. Lewra Pêxemberê Xwedê (s.) ji xwarina bi hevdu re kerihand. Paşê jî got: Bes eger mirov destûra birayê xwe bide, ew ji vê bi dere. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ مَا يَقُولُهُ وَيَفْعَلُهُ مَنْ يَأْكُلْ وَلَا يَشْبَعِ

## GOTINA MIROVÊ TÊRNEXWARÎ

٧٤٣- عَنْ وَحْشِيِّ بْنِ حَرْبٍ ﷺ أَنَّ أَصْحَابَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالُوا: يَا رَسُولَ اللهِ، إِنَّا نَأْكُلُ وَلَا نَشْبَعُ قَالَ: (فَلَعَلَّكُمْ تَفْتَرِقُونَ؟) قَالُوا: نَعَمْ، قَالَ: (فَاجْتَمِعُوا عَلَى طَعَامِكُمْ، وَاذْكُرُوا اسْمَ اللهِ، يُبَارِكْ لَكُمْ فِيهِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود.

743- Ji Wahşiyê kurê Herb (r.) hatiye rîwayetkirin ku sehabê Pêxemberê Xwedê (s.) gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Bêguman em xwarinê dixwin lê em têr nabin. Ewî (s.) got: "Her hal hûn bi cûdayî dixwin." Ewan gotin: Belê. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Hûn li ser xwarina xwe kom bibin û navê Xwedê bînin, wê Xwedê te'ala ewê xwarinê ji we re bereket bike." *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

## بَابُ الأمْرِ بِالأَكْلِ مِنْ جَانِبِ الْقَصْعَةِ

## XWARIN XWARINA JI KÊLEKA FIRAXÊ

٧٤٤- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (الْبَرَكَةُ تَنْزِلُ وَسْطَ الطَّعَامِ، فَكُلُوا مِنْ حَافَتَيْهِ وَلَا تَأْكُلُوا مِنْ وَسْطِهِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

744- Ji kurê 'Ebbas (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "bereket dikeve nîveka xwarinê. Vêca hûn ji kêlekê firaxê bixwin, ji navenda wê nexwin." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye ev hedîs hesen û sehîh e.*

٧٤٥- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ بُسْرٍ ﷺ قَالَ: كَانَ لِلنَّبِيِّ ﷺ قَصْعَةٌ يُقَالُ لَهَا: الْغَرَّاءُ يَحْمِلُهَا أَرْبَعَةُ رِجَالٍ، فَلَمَّا أَضْحَوْا وَسَجَدُوا الضُّحَى أُتِيَ بِتِلْكَ الْقَصْعَةِ، يَعْنِي وَقَدْ ثُرِدَ فِيهَا، فَالتَفُّوا عَلَيْهَا، فَلَمَّا كَثُرُوا جَثَا رَسُولُ الله ﷺ فَقَالَ أَعْرَابِيٌّ: مَا هَذِهِ الْجِلْسَةُ؟ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ اللَّهَ جَعَلَنِي عَبْداً كَرِيماً، وَلَمْ يَجْعَلْنِي جَبَّاراً عَنِيداً) ثُمَّ قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (كُلُوا مِنْ حَوَالَيْهَا، وَدَعُوا ذِرْوَتَهَا يُبَارَكْ فِيهَا). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد بِإِسْنَادٍ جَيِّدٍ.

745- Ji 'Ebdullahê kurê Busr (r.), got: Firaxeke Pêxember (s.) hebû, navê wê 'Xerra' bû, çar mirovan ew hildigirtin. Dema wextê taştê dihat û ewan nimêja tavê dikirin ew firax dihate anîn tê de avgoşt hebû. Vêca sehabe li dora wê kom dibûn. Wextê sehabe zehf bûyana Pêxemberê Xwedê (s.) li ser çokên xwe rûdinişt. Vêca mirovekî bedewî got: Ev rûniştandin çi ye? Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Xwedê te'ala ez ne sîtemkar û rikdar şandime. Dizane ez bendekî kerîm û comerd çêkirime." Û dûre jî Pêxemberê Xwedê (s.) wiha got: "Hûn ji kêleka firaxê bixwin, navenda wê bihêlin da ku bi bereket bibe." *Ebû Dawûd bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

## بَابُ كَرَاهِيَةِ الأَكْلِ مُتَّكِئاً

## MEKRUHIYETA XWARINA BI PALDAYÎ

٧٤٦- عَنْ أَبِي جُحَيْفَةَ وَهْبِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُول الله ﷺ: (لَا آكُلُ مُتَّكِئاً). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

746- Ji Ebû Cuheyfe Wehbê kurê 'Ebdullah (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bi palvedayî ez xwarinê naxwim." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٧٤٧- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: رَأَيْتُ رَسُولَ الله ﷺ جَالِساً مُقْعِياً يَأْكُلُ تَمْراً. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

747-Ji Enes (r.), got: Min dît Pêxemberê Xwedê (s.) rûniştîbû û çokên xwe rakiribû û xurme dixwar. *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ الأَكْلِ بِثَلاَثِ أَصَابِعَ
## MUSTEHEBBÛNA XWARINA BI SÊ TILIYAN

٧٤٨- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا أَكَلَ أَحَدُكُمْ طَعَاماً، فَلاَ يَمْسَح أَصَابِعَهُ حَتَّى يَلْعَقَهَا أَوْيُلْعِقَهَا). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

748- Ji kurê 'Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê yekî ji we xwarin xwar, heta tiliyên xwe nealêse û yan jî nede alisandin bila paqij neke." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٤٩- وَعَنْ كَعْبِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ قَالَ: رَأَيْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَأْكُلُ بِثَلاثِ أَصَابعَ، فَإِذَا فَرَغَ لَعِقَها. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

749- Ji Ke'bê kurê Malik (r.), got: Min dît Pêxemberê Xwedê (s.) bi sê tiliyan xwarin dixwar. Wextê bes dikir, tiliyên xwe dialist. *Muslim rîwayet kiriye.*

٧٥٠- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ أَمَرَ بِلَعْقِ الأَصَابِعِ وَالصَّحْفَةِ، وَقَالَ: (إِنَّكُمْ لاَ تَدْرُونَ فِي أَيِّ طَعَامِكُم الْبَرَكَةُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

750- Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) alastina tiliyan û alastina firaxê emir dikir û wiha digot: "Hûn nizanin ku bereket/adan di kîjan xwarina we de heye." *Muslim rîwayet kiriye.*

٧٥١- وَعَنْهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا وَقَعَتْ لُقْمَةُ أَحَدِكُمْ، فَلْيَأْخُذْهَا فَلْيُمِطْ مَا كَانَ بِهَا مِنْ أَذَىً وَلْيَأْكُلْهَا، وَلاَ يَدَعْهَا لِلشَّيْطَانِ، وَلاَ يَمْسَحْ يَدَهُ بِالْمِنْدِيلِ حَتَّى يَلْعَقَ أَصَابِعَهُ، فَإِنَّهُ لاَ يَدْرِي فِي أَيِّ طَعَامِهِ الْبَرَكَةُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

751- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê pariyê yekî ji we kete xwarê bila wê hilde, paqij bike, bixwe û bila

ji şeytan re nehêle. Û piştî xwarinê tu kes, heta tiliyên xwe nealêse, bila destê xwe bi destmalê paqij neke. Lewra ew nizane ku di kîjan xwarina wî de bereket/adan heye." *Muslim rîwayet kiriye.*

٧٥٢- وَعَنْهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّ الشَّيْطَانَ يَحْضرُ أَحَدَكُمْ عِنْدَ كُلِّ شَيْءٍ مِنْ شَأْنِهِ، حَتَّى يَحْضُرَهُ عِنْدَ طَعَامِهِ، فَإِذَا سَقَطَتْ لُقْمَةُ أَحَدِكُم فَلْيَأْخُذْهَا فَلْيُمِطْ مَا كَانَ بِهَا مِنْ أَذَى، ثُمَّ لِيَأْكُلْهَا وَلَا يَدَعْهَا لِلشَّيْطَانِ، فإِذَا فَرَغَ فَلْيَلْعَقْ أَصَابِعَهُ، فَإِنَّهُ لَا يَدْرِي فِي أَيِّ طَعَامِهِ الْبَرَكَةُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

752- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Di her wextî de şeytan li cem her yekî ji we peyda dibe, heta wextê xwarinê de jî li cem wî amade ye. Vêca wextê pariyê yekî ji we kete xwarê bila wê rake, qirêjaya ser paqij bike, paşê wê bixwe û ewê ji şeytan re nehêle. Îcar wextê bes kir bila tiliyên xwe bialêse. Lewra nizane ka di kîjan xwarinê de bereket/adan heye." *Muslim rîwayet kiriye.*

٧٥٣- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ الله ﷺ إِذَا أَكَلَ طَعَاماً لَعِقَ أَصَابِعَهُ الثَّلَاثَ، وَقَالَ: (إِذَا سَقَطَتْ لُقْمَةُ أَحَدِكُمْ فَلْيَأْخُذْهَا، وَلْيُمِطْ عَنْهَا الأَذَى، وَلْيَأْكُلْهَا، وَلَا يَدَعْهَا لِلشَّيْطَانِ) وَأَمَرَنا أَنْ نَسْلُتَ الْقَصْعَةَ وَقَالَ: (إِنَّكُمْ لَا تَدْرُونَ فِي أَيِّ طَعَامِكُمْ البَرَكَةُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

753- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wextê xwarin dixwar her sê tiliyên xwe dialist û wiha digot: "Wextê pariyê yekî ji we kete xwarê bila wê rake, qirêjaya ser paqij bike, bixwe û ewê ji şeytan re nehêle." Û emrê me dikir ku em firaxê bixeritînin û wiha digot: "Hûn nizanin ka di kîjan xwarina we de bereket/adan heye." *Muslim rîwayet kiriye.*

٧٥٤- وَعَنْ سَعِيدِ بْنِ الْحَارِثِ أَنَّهُ سَأَلَ جَابِراً ﷺ عَنِ الْوضُوءِ مِمَّا مَسَّتِ النَّارُ؟ فَقَالَ: لَا، قَدْ كُنَّا زَمَنَ النَّبِيِّ ﷺ لَا نجدُ مِثْلَ ذَلِكَ مِنَ الطَّعَامِ إِلَّا قَلِيلاً، فَإِذَا نَحْنُ وَجَدْنَاهُ، لَمْ يَكُنْ لَنَا مَنَادِيلُ إِلَّا أَكُفَّنَا وَسَوَاعِدَنَا وَأَقْدَامَنَا، ثُمَّ نُصَلِّي وَلَا نَتَوَضَّأُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

754- Ji Se'îdê kurê Haris (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Cabir (r.)

pirsiyar kiriye, ka destnimêj bi sedem tiştê ku agir lê ketiye dîsa tê girtin? Cabir got: Naxêr. Me di dewra Pêxember (s.) de xwarina mîna vê xwarinê pir hindik didît. Îcar wexta me bidîta jî ji xeynê dest, zend û piyê me destmalê me tunebû. Dûre jî em radibûn me nimêj dikir û ji bo vê jî me destnimêj nedigirt. *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَكْثِيرِ الأَيْدِي عَلَى الطَّعَام
## XWARINA BI HEVDU RE

٧٥٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (طَعَامُ الاثْنَيْنِ كَافِي الثَّلَاثَةِ، وَطَعَامُ الثَّلَاثَةِ كَافِي الأَرْبَعَةِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

755- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwarina du merivan têra sisyan dike û xwarina sê merivan têra çaran dike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٥٦- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (طَعَامُ الوَاحِدِ يَكْفِي الاثْنَيْنِ، وَطَعَامُ الاثْنَيْنِ يَكْفِي الأَرْبَعَةَ، وَطَعَامُ الأَرْبَعَةِ يَكْفِي الثَّمَانِيَةَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

756- Ji Cabir (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Xwarina mirovekî têra duduyan dike, xwarina du mirovan têra çaran dike û xwarina çar mirovan jî têra heştan dike." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ أَدَبِ الشُّرْبِ
## ADABÊ VEXWARINÊ

٧٥٧- عَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ كَانَ يَتَنَفَّسُ فِي الشَّرَابِ ثَلَاثاً. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

757-Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) av di sê bêhnan de vedixwar. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٥٨- وَعَنْ اِبْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَا تَشْرَبُوا وَاحِداً كَشُرْبِ البَعِيرِ، وَلَكِنِ اشْرَبُوا مَثْنَى وَثُلَاثَ، وَسَمُّوا إِذَا أَنْتُمْ شَرِبْتُمْ، وَاحْمَدُوا إِذَا أَنْتُمْ رَفَعْتُمْ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

  

758- Ji kurê ‘Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn wekî vexwarina hêstiran di yek carê de venexwin. Bes di du bêhnan de û yan jî sê bêhnan de vexwin. Wextê we dest bi vexwarinê kir navê Xwedê bînin û wextê we têr vexwar jî hemdê Xwedê bikin.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen e.*

٧٥٩- وَعَنْ أَبِي قَتَادَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ نَهَى أَنْ يُتَنَفَّسَ فِي الإِنَاءِ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمْ.

759- Ji Ebû Qetade (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) men‘a bêhnberdana di firaxê de kiriye. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٦٠- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللهِ ﷺ أُتِيَ بِلَبَنٍ قَدْ شِيبَ بِمَاءٍ، وَعَنْ يَمِينِهِ أَعْرَابِيٌّ، وَعَنْ يسَارِهِ أَبُو بَكْرٍ، فشَرِبَ، ثُمَّ أَعْطَى الأَعْرَابِيَّ وَقَالَ: (الأَيْمَنُ فَالأَيْمَنُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمْ.

760- Ji Enesê kurê Malik (r.) hatiye rîwayetkirin ku ji Pêxemberê Xwedê (s.) re firaxek şîrê bi avê hatiye tevlihev kirin hate anîn. Li Kêleka wî (s.) ya rastê miroveki bedewî rûniştibû û li kêleka wî ya çepê jî Ebû Bekir rûniştibû. Pêxemberê Xwedê (s.) ew vexwar, paşê da ewî merivê bedewî û got: “Aliyê rastê taqîb bikin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٦١- وَعَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ أُتِيَ بِشَرَابٍ، فَشَرِبَ مِنْهُ وَعَنْ يَمِينِهِ غُلَامٌ، وَعَنْ يَسَارِهِ أَشْيَاخٌ، فَقَالَ لِلغُلامِ: (أَتَأْذَنُ لِي أَنْ أُعْطِيَ هؤُلَاءِ؟) فَقَالَ الْغُلَامُ: لَا وَاللَّهِ، لَا أُوْثِرُ بِنَصِيبِي مِنْكَ أَحَداً، فَتَلَّهُ رَسُولُ الله ﷺ فِي يَدِهِ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمْ.

761- Ji Sehlê kurê Se‘d (r.) hatiye rîwayetkirin ku ji Pêxemberê Xwedê (s.) re vexwarinek hate anîn û ewî (s.) jê vexwar. Li kêleka wî (s.) ya rastê zarokek hebû û li kêleka wî ya çepê jî mirovê kal hebûn. Pêxemberê Xwedê (s.) ji ewî zarokê re got: “Tu destûra min didî ku ez evê bidime van kalan?” Zarokê got: Naxêr, bi sond. Para min ya ku ji aliyê te ve hatiye ez nabexşînime tu kesî. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) jî ew vexwarin da destê wî. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ كَرَاهَةِ الشُّرْبِ مِنْ فَمِ الْقِرْبَةِ

## MEKRUHIYETA AV VEXWARINA JI DEVÊ CÊRÊ AVÊ

٧٦٢- عَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: نَهَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنِ اخْتِنَاثِ الأَسْقِيَةِ. يَعْنِي: أَنْ تُكْسَرَ أَفْوَاهُهَا، وَيُشْرَبُ مِنْها. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

762- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) men'a av vexwarina ji firaxê dev şikestî kiriye. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٦٣- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: نَهَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ أَنْ يُشْرَبَ مِنْ فِي السِّقَاءِ أَوْ الْقِرْبَةِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

763- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) men'a av vexwarina ji devê avdankê û yan jî ji devê cêrê kiriye. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٦٤- وَعَنْ أُمِّ ثَابِتٍ كَبْشَةَ بِنْتِ ثَابِتٍ أُخْتِ حَسَّانَ بْنِ ثَابِتٍ ﷺ قَالَتْ: دَخَلَ عليَّ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَشَرِبَ مِنْ فِي قِرْبَةٍ مُعَلَّقَةٍ قَائِماً، فَقُمْتُ إِلَى فِيهَا فَقَطَعْتُهُ. رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

764- Ji Ummu Sabit Kebşe keça Sabit xuşka Hessanê kurê Sabit (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) hate cem me û ji devê meşka avê ya dardakirî û li ser piya av vexwar. Ez jî rabûm (ji bo teberukê veşêrim) min devê wê meşkê jêkir. *Tirmizi rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen û sehîh e.*

## بَابُ كَرَاهَةِ النَّفْخِ فِي الشَّرَابِ

## MEKRUHIYETA PIFKIRINA AVDANKÊ

٧٦٥- عَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ نَهَى عَنِ النَّفْخِ فِي الشَّرَابِ، فَقَالَ رَجُلٌ: القَذَاةُ أَرَاهَا فِي الإِنَاءِ، فَقَالَ: (أَهْرِقْهَا) قَالَ: إِنِّي لَا أَرْوَى مِنْ نَفَسٍ وَاحِدٍ، قَالَ: (فَأَبِنِ القَدَحَ إِذًا عَنْ فِيكَ) رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

765- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) men'a pifkirina avdankê kiriye. Vêca mirovekî got: Heger ez qirşekî di firaxê de bibînim? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "(Heta qirş bikeve) tu avê birijîne."

Ewî mirovî got: Ez mecbûrê pifkirinê me. Lewra ez bi bêhnekê têr venaxwim. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Wî çaxî avdankê ji devê xwe dûr bixe." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen û sehîh e.*

٧٦٦- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ نَهَى أَنْ يُتَنَفَّسَ فِي الإِنَاءِ، أَوْ يُنْفَخَ فِيهِ. رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

766- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) men'a bêhnberdana û yan jî pifkirina di firaxê de kiriye. *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen û sehîh e.*

## بَابُ بَيَانِ جَوَازِ الشُّرْبِ قَائِماً وَبَيَانِ أَنَّ الأَكْلَ وَالأَفْضَلَ الشُّرْبِ قَاعِداً

## DURISTBÛNA AV VEXWARINA LI SER PIYA LÊBELÊ YA RINDTIR AV VEXWARINA RÛNIŞTIYE

٧٦٧- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: سَقَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ مِنْ زَمزَمَ، فَشَرِبَ وَهُوَ قَائِمٌ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

767- Ji kurê 'Ebbas (r.), got: Min ava zemzemê pêşkeşê Pêxember (s.) kir, vêca ewî (s.) ew av li ser piya vexwar. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٦٨- وَعَنِ النَّزَّالِ بْنِ سَبْرَةَ ﷺ قَالَ: أَتَى عَلِيّ ﷺ عَلَى بَابِ الرَّحْبَةِ فَشَرِبَ قَائِماً، وَقَالَ: إِنِّي رَأَيْتُ رَسُولَ الله ﷺ فَعَلَ كَمَا رَأَيْتُمُونِي فَعَلْتُ. رَوَاهُ البُخَارِي.

768- Ji Nezzalê kurê Sebre (r.), got: Hezretî 'Elî hate ber derê Rehbeyê, li ser piya av vexwar û got: Wekî dîtina we ye bi min, min jî Pêxemberê Xwedê (s.) dît wiha dikir. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٧٦٩- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: كُنَّا نَأْكُلُ عَلَى عَهْدِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَنَحْنُ نَمْشِي، وَنَشْرَبُ وَنَحْنُ قِيَامٌ. رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

769- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Me di dewra Pêxemberê Xwedê (s.) de dixwar û em bi rê ve diçûn, me divexwar û em li ser piya bûn. *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen û sehîh e.*

٧٧٠- وَعَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ ﷺ قَالَ: رَأَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَشْرَبُ

قَائِماً وَقَاعِداً. رَوَاهُ التِّرمِذِي، وقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

770- Ji 'Emrê kurê Şu'eyb, ji bavê wî, ji kalkê wî (r.), got: Min Pêxemberê Xwedê (s.) dît hem li ser piya hem jî rûniştî av divexwar. *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen û sehîh e.*

٧٧١- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ: أَنَّهُ نَهَى أَنْ يَشْرَبَ الرَّجُلُ قَائِماً، قَالَ قَتَادَةُ: فَقُلْنَا لِأَنَسٍ: فالأَكْلُ، قَالَ: ذَلِكَ أَشَرُّ - أَوْ أَخْبَثُ - رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: أَنَّ النَّبِيَّ زَجَرَ عَنِ الشُّرْبِ قَائِماً.

771- Ji Enes (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) ku ewî (s.) men'a mirovekî kir ji av vexwarina li ser piya. Qetade dibêje: Me ji Enes re got: Lê xwarin? Enes got: Ew xerabtir e. *Muslim rîwayet kiriye.*

Di rîwayeteke dîtir ya Muslim de: Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) men'a av vexwarina li ser piya kiriye.

٧٧٢- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا يَشْرَبَنَّ أَحَدٌ مِنكُمْ قَائِماً، فَمَن نَسِيَ فَلْيَسْتَقِىء). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

772- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bila tu kes ji we li ser piya avê nevexwe. Kesê jibîr kir bila vereşe. *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ إِسْتِحْبَاب كَوْن سَاقِي الْقَوْم آخرهم شرْباً

## MUSTEHEBBÛNA AV VEXWARINA AVKÊŞ DAWIYA CEMAETÊ

٧٧٣- عَنْ أَبِي قَتَادَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (سَاقِي الْقَوْمِ آخِرُهُمْ شُرْباً). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

773- Ji Ebû Qetade (r.), ji Pêxember (s.) got: "Avkêşê cema'etê dawiya wan e ji alî vexwarinê de." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye ev hedîs hesen û sehîh e.*

## بَابُ جَوَاز الشُّرْب مِنْ جَمِيعِ الأَوَانِي الطَّاهِرَة غَيْر الذَّهَب وَالْفِضَّة

## DURISTBÛNA AV VEXWARINÊ JI HEMÛ FIRAQÊN PAQIJ JI XEYNÊ FIRAXÊN ZÊR Û ZÎV

٧٧٤- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: حَضَرَتِ الصَّلَاةُ، فَقَامَ مَنْ كَانَ قَرِيبَ الدَّارِ إِلَى أَهْلِهِ، وَبقِيَ قَوْمٌ فَأُتِيَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِمِخْضَبٍ مِنْ حِجَارَة، فَصَغُرَ المِخْضَبُ أَنْ يَبْسُطَ فِيهِ كَفَّهُ، فَتَوَضَأَ القَوْمُ كُلُّهُمْ. قَالُوا: كَمْ كُنْتُمْ؟ قَالَ: ثَمَانِينَ وَزِيَادَةً. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ وَلِمُسْلِمٍ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ دَعَا بِإِنَاءٍ مِنْ مَاءٍ، فَأُتِيَ بِقَدَحٍ رَحْرَاحٍ فِيهِ شَيْءٌ مِنْ مَاءٍ، فَوَضَعَ أَصَابِعَهُ فِيهِ. قَالَ أَنَس: فَجَعَلْتُ أَنْظُرُ إِلَى الْمَاءِ يَنْبُعُ مِنْ بَيْنِ أَصَابِعِهِ، فَحَزَرْتُ مَنْ تَوَضَّأَ مِنْهُ مَا بَيْنَ السَّبْعِينَ إِلَى الثَّمَانِينَ.

774- Ji Enes (r.), got: Wextê nimêjê hat. Vêca kesê mala wî nêzîk rabû û çû. Çend heb jî man. Ji Pêxemberê Xwedê (s.) re kuzikek hate anîn, lê ew kuzik wisa piçûk bû destê wî (s.) tê de bi cih nedibû. Vêca cema'etê hemûkî ji wê kuzikê destnimêj girt. Sehabiyan gotin: Hûn çend heb bûn? Enes got: Em ji heştê zêdetir bûn. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Eva rîwayetkirina Bûxarî bû. Rîwayeteke dîtir ya wî û ya di Muslim de: Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) firaxek av xwest. Vêca jê re avdanek dev fireh û tê de pirtî av heyî hate anîn. Pêxemberê Xwedê (s.) tiliyên xwe xistinê. Enes dibêje: Min li ava ku ji navbera tiliyên wî (s.) dinihêrî derdiket û min texmîn kir ku ew mirovê ji wê avê destnimêj girtin navbera heftê û heştê de bûn.

٧٧٥- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ زَيْد ﷺ قَالَ: أَتَانَا رَسُول الله ﷺ فَأَخْرَجْنَا لَهُ مَاءً فِي تورٍ مِنْ صُفْرٍ فَتَوَضَّأَ. رَوَاهُ البُخَارِي.

775- Ji 'Ebdullahê kurê Zeyd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) hate bal me, me jî jê re di kûzekî/simkutekî sifir de av bir. Ewî (s.) jî destnimêj girt. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٧٧٦- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ دَخَلَ عَلَى رَجُلٍ مِنَ الأَنْصَارِ، وَمَعَهُ صَاحِب لَهُ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنْ كَانَ عِنْدَكَ مَاءٌ بَاتَ هَذِهِ اللَّيْلَةَ فِي شَنَّةٍ وَإِلَّا كَرَعْنَا). رَوَاهُ البُخَارِي.

776- Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) hate bal mirovekî Ensarî û digel wî jî hevalekî wî hebû. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Heger di avdankê de ava şev ser re derbas bûyî li cem te hebe bide me.

Yan na emê dê ji ava newalê vexwin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٧٧٧- وَعَنْ حُذَيْفَةَ ﷺ قَالَ: إِنَّ النَّبِيَّ ﷺ نَهَانَا عَنِ الْحَرِيرِ وَالدِّيبَاجِ وَالشُّرْبِ فِي آنِيَةِ الذَّهَبِ والفِضَّةِ، وقَالَ: (هِيَ لَهُمْ فِي الدُّنْيَا، وَهِيَ لَكُمْ فِي الآخِرَةِ) رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

777- Ji Huzeyfe (r.), got: Pêxember (s.) nehya me ji hevrîşim, etles û vexwarina di firaxê zêr û zîv de kir û wiha digot: "Evna di dunyayê de yên wan in û di axîretê de jî yên we ne." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٧٨- وَعَنْ أُمِّ سَلَمَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (الَّذِي يَشْرَبُ فِي آنِيَةِ الفِضَّةِ إِنَّمَا يُجَرْجِرُ فِي بَطْنِهِ نَارَ جَهَنَّمَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: (إِنَّ الَّذِي يَأْكُلُ أَوْ يَشْرَبُ فِي آنِيَةِ الفِضَّةِ والذَّهَبِ).

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: (مَنْ شَرِبَ فِي إِنَاءٍ مِنْ ذَهَبٍ أَوْ فِضَّةٍ فَإِنَّمَا يُجَرْجِرُ فِي بَطْنِهِ نَاراً مِنْ جَهَنَّمَ).

778- Ji Ummu Seleme (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ew kesê di firaxê zîv de vexwarinê vedixwe bes ew di zikê xwe de agirê cehennemê diçeliqîne." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayeteke Muslim de: Kesê di firaxên zêr û zîv de dixwe û yan jî vedixwe.

Rîwayeteke wî ya dîtir de: Kesê di firaxên zêr û yan jî zîv de vexwe bes ewî zikê xwe tijî agirê cehennemê kiriye.

# كِتَابُ اللِّبَاسِ
# KITABUL-LÎBAS (POŞÎN)

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ الثَّوْبِ الأَبْيَضِ
## LIXWEKIRINA CILÊ SPÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿يَا بَنِي آدَمَ قَدْ أَنْزَلْنَا عَلَيْكُمْ لِبَاساً يُوَارِي سَوْآتِكُمْ وَرِيشاً وَلِبَاسُ التَّقْوَى ذَٰلِكَ خَيْرٌ﴾

"Gelî zarokên Adem! Bi rastî me cilek ji we re şand ku şermgaha we veşêre û cileke ku we ciwan bike û bixemilîne. Cila teqwadarî û baweriyê baştir e."[1]

﴿وَجَعَلَ لَكُمْ سَرَابِيلَ تَقِيكُمُ الْحَرَّ وَسَرَابِيلَ تَقِيكُمْ بَأْسَكُمْ﴾

"Kiras (ê ji hiriyê) bo we çêkirin ku we ji germa rojê biparêze û dîsa hinek kirasê din dane we ku we ji dijwariya şerê biparêze."[2]

٧٧٩- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﵄ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: الْبَسُوا مِنْ ثِيَابِكُمُ الْبَيَاضَ، فَإِنَّهَا مِنْ خَيْرِ ثِيَابِكُمْ، وَكَفِّنُوا فِيهَا مَوْتَاكُمْ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

779- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.)

1 E'raf, 7/26.
2 Nehl, 16/81.

gotiye: "Hûn cilê xwe yê spî wergirin. Lewra ew çêtirê cilê we ye û hûn miriyê xwe jî di nav wê de kefen bikin." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

٧٨٠- وَعَنْ سَمُرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (الْبِسُوا الْبَيَاضَ، فَإِنَّهَا أَطْهَرُ وأَطْيَبُ، وَكَفِّنُوا فِيهَا مَوْتَاكُمْ). رَوَاهُ النَّسَائِي وَالْحَاكِمُ، وَقَالَ: حَدِيثٌ صَحِيحٌ.

780- Ji Semure (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn cilê xwe yê spî wergirin. Lewra ew paqijtir û xweştir e. Û miriyê xwe jî di nav wê de kefen bikin." *Nesaî û Hakim rîwayet kirine û gotiye hedîs sehîh e.*

٧٨١- وَعَنْ الْبَرَاءِ بْنِ عَازِبٍ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ مَرْبُوعاً وَلَقَدْ رَأَيْتُهُ فِي حُلَّةٍ حَمْرَاءَ، مَارَأَيْتُ شَيْئاً قَطُّ أَحْسَنَ مِنْهُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

781- Ji Bera'ê kurê 'Azib (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) bejna wî ne kin û ne jî dirêj bû. Min rojekê ew di nav kincekî xîzikên sor tê de heyî dît. Min tu carî tiştekî ji wê rindtir nedîtibû. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٨٢- وَعَنْ أَبِي جُحَيْفَةَ وَهْبِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: رَأَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ بِمَكَّةَ وَهُوَ بِالأَبْطَحِ فِي قُبَّةٍ لَهُ حَمْرَاءَ مِنْ أَدَمٍ، فَخَرَجَ بِلَالٌ بِوَضُوئِهِ، فَمِنْ نَاضِحٍ وَنَائِلٍ، فَخَرَجَ النَّبِيُّ ﷺ وَعَلَيْهِ حُلَّة حَمْرَاءُ، كَأَنِّي أَنْظُرُ إِلَى بَيَاضِ سَاقَيْهِ، فَتَوَضَّأَ وَأَذَّنَ بِلَالٌ، فَجَعَلْتُ أَتَتَبَّعُ فَاهُ هَهُنَا وَهَهُنَا يَقُولُ يَمِيناً وشِمَالاً: حَيَّ عَلَى الصَّلَاةِ، حَيَّ عَلَى الفَلَاحِ، ثُمَّ رُكِزَتْ لَهُ عَنَزَةٌ، فَتَقَدَّمَ فَصَلَّى يَمُر بَيْنَ يَدَيْهِ الكَلْبُ وَالْحِمَارُ لَا يُمْنَعُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

782- Ji Ebû Cuheyfe Wehbê kurê 'Ebdullah (r.), got: Min Pêxemberê Xwedê (s.) li Mekkeyê li Ebtehê di konê/çadira wî ya ji çermê sor de dît. Bilalê Hebeşî bi ava destnimêja wî derket, hineka ew av li xwe direşand û hinekan jî bi kulman jê radikir. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) ji kon derket û li ser cilekî sor hebû. Her wekî ez niha jî li teşkên wî (s.) yê spî dinêrim. Pêxemberê Xwedê (s.) destnimêj girt û Bilal jî bang da. Min jî wê demê li devê Bilal nihêrî; li vî alî û li wî alî, li aliyê rastê û li aliyê çepê ve diziviri û digot: "Heyye'les-selah, heyye'lel-felah." Piştre li pêşiya Pêxemberê Xwedê

  

(s.) gopalekî serê wî de hesinek tûj hebû hate çikandin. Pêxemberê Xwedê (s.) derbazî pêşiyê bû û nimêj kir. Se û ker ber wê setrê re derbas dibûn men'a wan jî nedihate kirin. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٨٣- وَعَنْ أَبِي رِمْثَةَ رِفَاعَةَ التَّيْمِيِّ ﷺ قَالَ: رَأَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ وَعَلَيْهِ ثَوْبَانِ أَخْضَرَانِ.

رَوَاهُ أَبُو دَاوُد وَالتِّرْمِذِي. بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

783- Ji Ebû Rimse Rifa'etet-Temîmî (r.), got: Min Pêxemberê Xwedê (s.) dît li ser wî du kincên kesk hebûn. *Ebû Dawûd û Tirmizî bi senedeke sehîh rîwayet kirine.*

٧٨٤- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ دَخَلَ يَوْمَ فَتْحِ مَكَّةَ وَعَلَيْهِ عِمَامَةٌ سَوْدَاءُ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

784-Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) roja fethê kete Mekkeyê li serê wî şaşikek reş hebû. *Muslim rîwayet kiriye.*

٧٨٥- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ عَمْرِو بْنِ حُرَيْثٍ ﷺ قَالَ: كَأَنِّي أَنْظُرُ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَعَلَيْهِ عِمَامَةٌ سَوْدَاءُ قَدْ أَرْخَى طَرَفَيْهَا بَيْنَ كَتِفَيْهِ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ خَطَبَ النَّاسَ، وَعَلَيْهِ عِمَامَةٌ سَوْدَاءُ.

785- Ji Ebû Se'îd 'Emrê kurê Hureys (r.), got: Ez her wekî Pêxemberê Xwedê (s.) dibînim û li serê wî şaşikek reş hebû û her du niçikên wê berda bûn navbera her du sermilên xwe. *Muslim rîwayet kiriye.*

Di rîwayeteke Muslim ya dîtir de jî: Pêxemberê Xwedê (s.) xutbe da û li serê wî jî şaşikek reş hebû.

٧٨٦- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: كُفِّنَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فِي ثَلَاثَةِ أَثْوَابٍ بِيضٍ سَحُولِيَّةٍ مِنْ كُرْسُفٍ لَيْسَ فِيهَا قَمِيصٌ وَلَا عِمَامَةٌ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

786- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) di nav sê qet qumaşê ji pembûyê spî yê çêkirî ji Sehûlê de hate kefen kirin. Di wan de kiras û şaşik tunebû. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٨٧- وَعَنْهَا قَالَتْ: خَرَجَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ ذَاتَ غَدَاةٍ، وَعَلَيْهِ مِرْطٌ مُرَحَّلٌ مِنْ شَعْرٍ أَسْوَدَ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

787- Dîsa ji wê (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) sibehekê derket û li

ser kincekî ku ji hiriya reş neqşê zînê hêstiran hatîbû çêkirin hebû. *Muslim rîwayet kiriye.*

٧٨٨- وَعَنِ الْمُغِيرَةِ بْنِ شُعْبَةَ ﷺ قَالَ: كُنْتُ مَعْ رَسُول الله ﷺ ذَاتَ لَيْلَةٍ فِي مَسِيرٍ، فَقَالَ لِي: (أَمَعَكَ مَاءُ؟) قُلْتُ: نَعَمْ، فَنَزَلَ عَنْ رَاحِلَتِهِ فَمَشَى حَتَّى تَوَارَى فِي سَوَادِ اللَّيْلِ، ثُمَّ جَاءَ، فَأَفْرَغْتُ عَلَيْهِ مِنَ الإدْاوَةِ، فَغَسَلَ وَجْهَه وَعَلَيْهِ جُبَّةٌ مِنْ صُوفٍ، فَلَمْ يَسْتَطِعْ أَنْ يُخْرِجَ ذِرَاعَيْهِ مِنْهَا حَتَّى أَخْرَجَهُمَا مِنْ أَسْفَلِ الْجُبَّةِ، فَغَسَلَ ذِرَاعَيْهِ وَمَسَحَ بِرَأْسِهِ، ثُمَّ أَهْوَيْتُ لأَنْزَعَ خُفَيْهِ فَقَالَ: (دَعْهُمَا فَإِنِّي أَدْخَلْتُهُمَا طَاهِرَتَيْنِ) وَمَسَحَ عَلَيْهِمَا. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

وَفِي رِوَايَةٍ: وَعَلَيْهِ جُبَّةٌ شَامِيَّةٌ ضَيِّقَةُ الْكُمَّيْنِ.

وَفِي رِوَايَةٍ: أَنَّ هَذِهِ الْقَضِيَّةَ كَانَتْ فِي غَزْوَةِ تَبُوكٍ.

788- Ji Muxîreyê kurê Şu'be (r.), got: Ez şevekê digel Pêxemberê Xwedê (s.) di rêyekê de bûm. Ewî (s.) ji min re got: "Bi te re av heye?" Min got: Belê. Vêca ew (s.) ji merkeba xwe peya bû û di tarîtiya şevê de winda bû. Paşê hat, min jî ji wê kuzikî av ser destê wî de kir. Ewî (s.) rûyê xwe şûşt û li ser jî cibekê hirî hebû. Nekarî ku her du milê xwe jê derbixe, ancax ji bin cibe ve derxist. Û her du milê xwe şûşt û serê xwe mesh kir. Piştre min xwe xwar kir ku ez xufikê piyê wî derbixim, lê ewî (s.) got: "Dev jê berde. Lewra min ewana bi destnimêjî wergirtin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetekê de: Li ser wî cibekê Şamî û her du devmilê wî teng hebû.

Di rîwayeteke dîtir de: Ev bûyera hanê di herba Tebûkê de bû.

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ الْقَمِيصِ
## WERGIRTINA KIRASAN

٧٨٩- عَنْ أُمِّ سَلَمَةَ ﷺ قَالَتْ: كَانَ أَحَبَّ الثِّيَابِ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ الْقَمِيصُ. رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

789- Ji Ummu Seleme (r.), got: Li ba Pêxemberê Xwedê, (s.) hezjêkirîtirê kincan kiras bû. *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ صِفَة طُولِ الْقَمِيصِ وَالْكَمِّ وَالإِزَارِ
## WESFÊ DIRÊJÎ Û KINÎTIYA KIRASAN

٧٩٠- عَنْ أَسْمَاءَ بِنْتِ يَزِيدَ الأَنْصَارِيَّةِ ﷺ قَالَتْ: كَانَ كُمُّ قميصِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ إِلَى الرُّسْغِ. رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

790- Ji Esmaya keça Yezîd el-Ensarî (r.), got: Devmilê kirasê Pêxemberê Xwedê (s.) heta zendê wî bûn. *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

٧٩١- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (مَنْ جَرَّ ثَوْبَهُ خُيَلَاءَ لَمْ يَنظرِ اللَّهُ إِلَيْهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ) فَقَالَ أَبُو بَكْرٍ ﷺ: يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنَّ إِزَارِي يسْتَرْخى إِلَّا أَنْ أَتَعَاهَدهُ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (إِنَّكَ لَسْتَ مِمَّنْ يَفْعَلهُ خَيلَاءَ). رَوَاهُ البُخَارِي.

791- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Kî kincê xwe bi qurretî bi erdê ve bixişikîne Xwedê te'ala roja qiyametê li wî nanêre." Vêca Ebû Bekirê Siddîq (r.) got: Ya Pêxemberê Xwedê! Bêguman pêşmalka min eger ez wê neparêzim di erdê dixişike. Pêxemberê Xwedê (s.) jê re got: "Tu ne ji wan kesan î ku bi qurretî wilo dikin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٧٩٢- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا يَنْظُرُ اللَّهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ إِلَى مَنْ جَرَّ إِزَارَهُ بَطَراً). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

792- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedê roja qiyametê li wî kesê ku bi qurretî pêşmalka xwe bierdê re dixişikîne nanêre." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٧٩٣- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَا أَسْفَلَ مِنَ الْكَعْبَيْنِ مِنَ الإِزَارِ فَفِي النَّارِ). رَوَاهُ البُخَارِي.

793- Dîsa ji wî (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ji pêşmalkê ji gûzekan berjêrtir be di êgir de ye." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٧٩٤- وَعَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (ثَلَاثَةٌ لَا يُكَلِّمُهُمُ اللَّهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، وَلَا يَنْظُرُ إِلَيْهِمْ، وَلَا يُزَكِّيهِمْ، وَلَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ) قَالَ: فَقَرَأَهَا رَسُولُ اللَّهِ ثَلَاثَ مِرَارٍ. قَالَ أَبُو

ذَرٍّ: خَابُوا وخَسِرُوا مَنْ هُمْ يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: (الْمُسْبِلُ، وَالْمَنَّانُ، وَالْمُنْفِقُ سِلْعَتَهُ بِالْحَلفِ الْكَاذِبِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

794- Ji Ebû Zerrê (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Sê qisim însan hene Xwedê te'ala roja qiyametê bi wan re naaxive, li wan nanihêre û ewan tezkiye nake. 'Ezabekî dilsoj jî ji wan re ye." Û Pêxemberê Xwedê (s.) ev sê caran xwend. Ebû Zerr got: Ewê xesirîne kî ne ya Pêxemberê Xwedê? Ewî (s.) jî got: "Ew mirovên ku bi qurretî kincê xwe bi erdê re dixişikîne û yek jî ew mirovê ku minetê dike û yek jî ew mirovê ku bi sonda derew malê xwe difroşe." *Muslim rîwayet kiriye.*

٧٩٥- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (الإِسْبَالُ فِي الإِزَارِ، وَالْقَمِيصِ، وَالْعِمَامَةِ، مَنْ جَرَّ شَيْئاً خُيَلَاءَ لَمْ يَنظُرِ الله إِلَيْهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود والنَّسَائِي بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

795- Ji kurê 'Emer (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Dirêjkirina pêşmalkê û kiras û şaşikê; kesê ji van tiştekî bi qurretî dirêj bike Xwedê te'ala roja qiyametê lê nanihêre." *Ebû Dawûd û Nesaî bi senedeke sehîh rîwayet kirine.*

٧٩٦- وَعَنْ أَبِي جُرَيٍّ جَابِرِ بْنِ سُلَيمٍ ﷺ قَالَ: رَأَيتُ رَجلاً يَصْدُرُ النَّاسُ عَنْ رَأْيِهِ لَا يَقُولُ شَيْئاً إِلَّا صَدَرُوا عَنْهُ، قُلْتُ: مَنْ هَذَا؟ قَالُوا: رَسُولُ اللَّهِ ﷺ قُلْتُ: عَلَيْكَ السَّلَامُ يَا رَسُولَ اللَّهِ - مَرَّتَيْنِ -قَالَ: (لَا تَقُل عَلَيْكَ السَّلَامُ، عَلَيْكَ السَّلَامُ تَحِيَّةُ الْمَوْتَى قُل: السَّلَامُ عَلَيْكَ) قَالَ: قُلْتُ: أَنْتَ رَسُولُ اللَّهِ؟ قَالَ: (أَنَا رَسُولُ اللَّهِ الَّذِي إِذَا أَصَابَكَ ضُرٌ فَدَعَوْتَهُ كَشَفَهُ عَنْكَ، وَإِذَا أَصَابَكَ عَامُ سَنَة فَدَعَوْتَهُ أَنبَتَهَا لَكَ، وَإِذَا كُنْتَ بِأَرْضٍ قَفْرٍ أَوْ فَلَاةٍ، فَضَلَّت رَاحِلَتُكَ، فَدَعَوْتَه رَدَهَا عَلَيْكَ) قَالَ: قُلْتُ: اعْهَدْ إلَيَّ، قَالَ: (لَا تَسُبَّنَّ أَحداً) قَالَ: فَمَا سَبَبْتُ بَعْدَهُ حُرّاً، وَلَا عَبْداً، وَلَا بَعِيراً، وَلَا شَاةً (وَلَا تَحقِرَنَّ مِنَ الْمَعرُوفِ شَيْئاً، وَأَنْ تُكَلِّمَ أَخَاكَ وَأَنْتَ مُنْبَسِطٌ إِلَيْهِ وَجْهُكَ، إِنَّ ذَلِكَ مِنَ الْمَعرُوفِ، وَارْفَعْ إِزَارَكَ إِلَى نِصْفِ السَّاقِ، فَإِنْ أَبَيْتَ فَإِلَى الْكَعْبَيْنِ، وَإِيَّاكَ وَإِسْبَالَ الإِزَارِ فَإِنَّهَا مِنَ الْمَخِيلةِ وَإِنَّ اللَّهَ لَا يُحِبُّ المَخِيلَةَ، وَإِنْ امْرؤٌ شَتَمَكَ أَوعَيَّرَكَ بِمَا يَعْلَمُ فِيكَ فَلَا تُعَيِّرَهُ

بِمَا تَعلَم فِيهِ، فَإِنَّمَا وَبَالُ ذَلِكَ عَلَيْهِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرمِذِي. بِإِسْنَادٍ صَحِيح.

796- Ji Ebû Cureyy Cabirê kurê Suleym (r.), got: Min mirovek dît ku însanan bi anegorî ramanê wî karê xwe dikirin, wî çi bigota însanan bi anegorî gotina wî hereket dikirin. Min got: Ev kî ye? Ewan gotin: Pêxemberê Xwedê ye. Vêca min du caran got: 'Eleykes-selam, ya Pêxemberê Xwedê! Ewî (s.) got: Tu nebêje'eleykes-selam. Lewra 'eleykes-selam silavdayina miriyan e. Tu bêje: Es-selamu 'eleyk." Rawî dibêje: Min got: Tu Pêxemberê Xwedê yî? Ewî (s.) got: "Ez Pêxemberê wî Xwedayî me ku wextê musibetek li te peyda bibe û tu jî ji wî dua bixwaze, ew wê musibetê ji te dûr dike, wextê xela li te peyda bibe û tu jî ji wî dua bixwazî ew ji te re zad hêşîn dike û wextê tu erdekî çorax û di çolekê de hêstira xwe winda bikî û ji wî dua bixwazî ewê wê hêstira te li te vegerîne." Rawî dibêje: Min got: Şîretekê li min bike. Ewî (s.) got: "Tu çêran/dijûnan neke." Rawî dibêje: Min piştî wê şîretê ji tu kesî; ne azad, ne kole, ne hêştir û ne ji pez re çêr nekir. Dîsa wî (s.) ji min re got: "Tu qenciyê piçûk nebîne û bi birayê xwe (yê misilman) re bi rûyê ken biaxive. Lewra ew kiryar jî qencî ye. Pêşmalka xwe heta nîvê teşkê xwe bilind ke, eger tu wisa naxwazî heta gûzekan dirêj bike. Tu xwe ji xişikandina pêşmalkê biparêze. Lewra ew ji qurretiyê ye. Û Xwedê jî ji qurretiyê hez nake. Heger mirovekî ji te re çêr kir û bi eybê ku dizane di te de heyî tu pê 'eybdar kirî tu wî ya bi eybê ku tu dizanî tê de heyî pê 'eybdar neke. Lewra webalê vê bi tenê li ser wî ye." *Ebû Dawûd û Tirmizî bi senedeke sehîh riwayet kirine.*

٧٩٧- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: بَيْنَمَا رَجُلٌ يُصَلِّي مُسْبِلٌ إِزَارَهُ، قَالَ لَهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (اذْهَبْ فَتَوَضَّأْ فَذَهَبَ فَتَوَضَّأَ، ثُمَّ جَاءَ، فَقَالَ: اذْهَبْ فَتَوَضَّأ) فَقَالَ لَهُ رَجُلٌ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، مَا لَكَ أَمَرْتَهُ أَنْ يَتَوَضَّأَ ثُمَّ سَكَتَّ عَنْهُ؟ قَالَ: (إِنَّهُ كَانَ يُصَلِّي وَهُوَ مُسْبِلٌ إِزَارَهُ، وَإِنَّ اللَّهَ لَا يَقْبَلُ صَلَاةَ رَجُلٍ مُسْبِلٍ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيح.

797- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Mirovekî nimêj dikir, lê pêşmalka wî bi erdê ve dixişikî. Pêxemberê Xwedê (s.) ji wî re got: "Tu here û destnimêj bigre." Ew mirov çû, destnimêj girt û hat. Pêxemberê Xwedê (s.) dîsa ji wî re got: "Tu here û destnimêj bigre." Vêca mirovekî li wê derê got: Ya Pêxemberê Xwedê! Çi dibe li te? Te emrê wî kir ku destnimêj bigre, paşê jî te xwe ker kir. Ewî (s.) got: "Ewî nimêj dikir. Lê pêşmalka wî bi erdê ve dixişikî. Ya rastî, Xwedê te'ala nimêja mirovê ku pêşmalka xwe dixişikîne

qebûl nake." *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh riwayet kiriye.*

٧٩٨- وَعَنْ قَيْسِ بْنِ بِشْرٍ التَّغْلِبِيِّ قَالَ: أَخْبَرَنِي أَبِي، وَكَانَ جَلِيساً لِأَبِي الدَّرْدَاء، قَالَ: كَانَ بِدِمَشْقَ رَجُلٌ مِنْ أَصْحَابِ النَّبِيِّ ﷺ يُقَالُ لَهُ: سَهْلُ بْنُ الْحَنْظَلِيَّةِ، وَكَانَ رَجُلاً مُتَوَحِّداً قَلَّمَا يُجَالِسُ النَّاسَ، إِنَّمَا هُوَ فِي صَلَاةٌ، فَإِذَا فَرَغَ فَإِنَّمَا هُوَ تَسْبِيحٌ وَتَكْبِيرٌ حَتَّى يَأْتِي أَهْلَهُ، فَمَرَّ بِنَا وَنَحْنُ عِنْدَ أَبِي الدَّرْدَاءِ، فَقَالَ لَهُ أَبُو الدَّرْدَاءِ: كَلِمةً تَنْفَعُنَا وَلَا تَضُرُّكَ. قَالَ: بَعَثَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ سَرِيَّةً فَقَدِمَتْ، فَجَاءَ رَجُلٌ مِنْهُم فَجَلَسَ فِي الْمَجْلِسِ الَّذِي يَجْلِسُ فِيهِ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ لِرَجُلٍ إِلَى جَنْبِهِ: لَوْ رَأَيْتَنَا حِينَ الْتَقَيْنَا نَحْنُ وَالعَدُو، فَحَمَلَ فُلَانٌ وَطَعَنَ، فَقَالَ: خُذْهَا مِنِّي، وَأَنَا الْغُلَامُ الغِفَارِيُّ، كَيْفَ تَرَى فِي قَوْلِهِ هَذَا؟ قَالَ: مَا أَرَاهُ إِلَّا قَدْ بَطَلَ أَجْرُهُ، فَسَمِعَ بِذَلِكَ آخَرُ فَقَالَ: مَا أَرَى بِذَلِكَ بَأْساً، فَتَنَازَعَا حَتَّى سَمِعَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: (سُبْحَانَ الله لَا بَأْسَ أَنْ يُؤْجَرَ وَيُحْمَدَ) فَرَأَيْتُ أَبَا الدَّرْدَاءِ سُرَّ بِذَلكَ، وَجَعَلَ يَرْفَعُ رَأسَه إِلَيْهِ وَيَقُولُ: أَأَنْتَ سَمِعْتَ ذَلِكَ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فيَقُولُ: نَعَمْ، فَمَا زَالَ يعِيدُ عَلَيْهِ حَتَّى إِنِّي لأَقُولُ لَيَبْرُكَنَّ عَلَى رُكْبَتَيْهِ، قَالَ: فَمَرَّ بِنَا يَوْماً آخَرَ، فَقَالَ لَهُ أَبُو الدَّرْدَاءِ: كَلِمَةً تَنْفَعُنَا وَلَا تَضُرُّكَ، قَالَ: قَالَ لَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (الْمُنْفِقُ عَلَى الْخَيْلِ كَالْبَاسِطِ يَدَهُ بِالصَّدَقَةِ لَا يَقْبِضُهَا) ثُمَّ مَرَّ بِنَا يَوْماً آخَرَ، فَقَالَ لَهُ أَبُو الدَّرْدَاءِ: كَلِمَةً تَنْفَعُنَا وَلَا تَضُرُّكَ، قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (نِعْمَ الرَّجُلُ خُرَيْمٌ الأَسَدِيُّ لَوْلَا طُولُ جُمَّتِهِ وَإِسْبَالُ إِزَارِهِ) فَبَلَغَ خُرَيماً، فَعَجَّلَ، فَأَخَذَ شَفرَةً فَقَطَعَ بِهَا جُمَتَهُ إِلَى أُذُنَيْهِ، وَرَفَعَ إِزَارَهُ إِلَى أَنْصَافِ سَاقَيْهِ، ثُمَّ مَرَّ بِنَا يَوْماً آخَرَ فَقَالَ لَهُ أَبُو الدَّرْدَاءِ: كَلِمَةً تَنْفَعُنَا وَلَا تَضُرُّكَ، قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (إِنكُمْ قَادِمُونَ عَلَى إِخْوَانِكُمْ، فَأَصْلِحُوا رِحَالَكُمْ، وَأَصْلِحُوا لِبَاسَكُمْ حَتَّى تكُونُوا كَأَنَّكُمْ شَامَةٌ فِي النَّاسِ، فَإِنَّ اللَّهَ لَا يُحِبُّ الفُحْشَ وَلَا التَّفَحُّشَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

  

798- Ji Qeysê kurê Bişrê Texlibî, got: Bavê min –ku dostê Ebû Derda bû– ji min re got: Li Şamê mirovekî ji eshabê Pêxember (s.) hebû, jê re Sehlê kurê Henzeliye dihate gotin. Ew mirovekî bi tena serê xwe bû û pir kêm bi însanan re sohbet dikir. Karê wî her nimêj bû, wextê ji nimêjê vala bûya heta bihata mala xwe bi tesbîh û tekbîra ve mijûl dibû. Rojekê em li cem Ebû Derda bûn, ew sehabe jî di ber me re derbas bû. Ebû Derda jê re got: Tu ji bo me gotineke ku bi kêrî me were û xesarê nede te bêje. Vêca ewî (r.) got: Pêxemberê Xwedê (s.) lîqek leşker şand. Vêca ew lîqa vegeriya û hat. Îcar mirovek ji wê lîqa leşker hat û di civata ku Pêxemberê Xwedê (s.) lê rûniştî ew jî lê rûnişt. Û ji mirovê kêleka xwe re got: Xwezî wextê em û neyar di cengê de rastî hev hatin te em bidîtana. Filan kesê êrîş bire ser neyarî, rimê xwe di neyarî de çikand û got: Han ji te re! Ez xortê êla Xiffarî me. Tu evî gotina wî çawa dibînî? Vêca ewî mirovî got: Ya ku ez dizanim xêra wî hemû betal bû. Mirovekî din jî eva bihîst û wî jî got: Ez tu xerabiyê di vê de nabînim. Vêca her dukan li berhevdan heta Pêxemberê Xwedê (s.) jî bihîst û got: “Subhanellah, tu zerar tune ku ew mirov xwedanxêr bibe û were pesindan.” Rawî dibêje: Min dît ku Ebû Derda bi vê ya kêfxweş bû, serê xwe bilind kir berê xwe da wî sehabî û got: Te ev gotin ji Pêxemberê Xwedê bihîst? Wî got: Belê. Ebû Derda bêrawest eva tekrar kir heta min got eva wê çok bide. Rawî dibêje: Ew sehabî dîsa di ber me re derbas bû, vêca Ebûd-Derda dîsa jê re got: Tu ji bo me gotineke ku bi kêrî me were û xesarê nede te bêje. Ewî sehabiyî (r.) got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji me re got: “Ew kesê ji hespê xwe (yê cengê re) dimezixîne wekî wî mirovê ku bi dayina sedeqa destê xwe vekiriye û nagire ye.” Rojeke din dîsa ew sehabî di ber me re derbas bû û Ebû Derda dîsa jê re got: Tu ji bo me gotineke ku kêrî bi me were û xesarê nede te bêje. Ewî (s.) jî got: Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Xureymê Useydî xweş mirov e. Xwezî dirêjaya cênig û xişikandina pêşmalka wî nebûya!” Vêca ev yeka gihîşte Xureym û ewî lez kir: Cawbir hilda, cêniga xwe heta taxa her du guhên xwe birî û pêşmalka xwe jî heta nîvê teşkê xwe bilind kir. Ew sehabî (Sehlê kurê Henzeliye) rojekê dîsa di ber me re derbas bû û dîsa Ebû Derda jê re got: Tu ji bo me gotineke ku bi kêrî me were û xesarê nede te bêje. Ewî (r.) got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: ‘Hûnê herine cem birayê xwe. Vêca hûn heywanê xwe yê ku lê siwardibin û dilqê xwe serast bikin heta ku hûn bi tiliyan bêne nîşandan. Lewra Xwedê te‘ala ji xerabiyê û ji kirinê pişêw/kirêt hez nake.” *Ebû Dawûd bi senedeke hesen riwayet kiriye.*

٧٩٩- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِزْرَةُ الْمُسْلِمِ إِلَى نِصْفِ السَّاقِ، وَلَا حَرَجَ -أَوْ لَا جُنَاحَ- فِيمَا بَيْنَهُ وَبَيْنَ الْكَعْبَيْنِ، فَمَا كَانَ أَسْفَلَ مِنَ الْكَعْبَيْنِ فَهُوَ فِي النَّارِ، وَمَنْ جَرَّ إِزَارَهُ بَطَراً لَمْ يَنْظُرِ الله إِلَيْهِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

799- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Pêşmalka misilman heta nîvê teşkê ye. Di navbera teşk û her du gûzekan de guneh tune. Ewa ku ji gûzeka berjêrtir be di êgir de ye. Kî bi qurretî pêşmalka xwe bi erdê ve bixişikîne Xwedê te'ala lê nanihêre." *Ebû Dawûd bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

٨٠٠- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: مَرَرْتُ عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَفِي إِزَارِي اسْتِرْخَاءٌ، فَقَالَ: (يَا عَبْدَ الله ارْفَعْ إِزَارَكَ) فَرَفَعْتُهُ ثُمَّ قَالَ: (زِدْ)، فَزِدْتُ، فَمَا زِلْتُ أَتَحَرَّاهَا بَعْدُ، فَقَالَ بَعْضُ الْقَوْمِ: إِلَى أَيْنَ؟ فَقَالَ: إِلَى أَنْصَافِ السَّاقَيْنِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

800-Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Ez di ber Pêxemberê Xwedê (s.) re derbas bûm, di pêşmalka min de dirêjayî hebû. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ya 'Ebdullah! Pêşmalka xwe bilind ke." Min bilind kir. Paşê got: "Hinekî din jî rake." Min hinekî din jî rakir. Û piştî wê jî her wext min bal da vê yekê. Ji cema'etê hineka gotin: Heta kuderê? Îbn 'Umer jî got: Heta nîvê teşkan. *Muslim rîwayet kiriye.*

٨٠١- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ جَرَّ ثَوْبَهُ خُيَلَاءَ لَمْ يَنْظُرِ الله إِلَيْهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ) فَقَالَتْ أُمُّ سَلَمَةَ: فَكَيْفَ تَصْنَعُ النِّسَاءِ بِذُيُولِهِنَّ؟ قَالَ: (يُرْخِينَ شِبْراً) قَالَتْ: إِذاً تَنْكَشِفُ أَقْدَامُهُنَّ، قَالَ: (فَيُرْخِينَهُ ذِرَاعاً لَا يَزِدْنَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

801- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî kincê wî bi qurretî bi erdê ve bixişike Xwedê te'ala roja qiyametê li wî nanihêre. Vêca Ummu Selemeyê (r.) got: Jinê pêşê xwe çawa bikin? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bila bihustekê berjêr kin." Ummu Selemeyê got: Wê demê lingê wan yê bêne kifşê. Ewî (s.) got: "Bila gazekî/ziraekî berjêr kin û bila ji vê jî zêdetir nekin." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ تَرْكِ التَّرَفُّعِ فِي اللِّبَاسِ تَوَاضُعاً
## TERIKANDINA MEZNATIYÊ BI CILA

٨٠٢- وَعَنْ مَعَاذِ بْنِ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ تَرَكَ اللِّبَاسَ تَوَاضُعاً لِلهِ، وَهُوَ يَقْدِرُ عَلَيْهِ دَعَاهُ اللَّهُ يَوْمَ القِيَامَةِ عَلَى رُؤُوسِ الْخَلَائِقِ حَتَّى يُخَيِّرَهُ مِنْ أَيِّ حُلَلِ الإِيمانِ شَاءَ يَلْبَسُهَا) رَوَاهُ التِّرمِذِي، وقَالَ: حديث حسن.

802- Ji Mu'azê kurê Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Kesê wergirtina kincê birimês, ku dikare wergire jî, bes ji bo riza Xwedê bi dilnizmî biterikîne, Xwedê te'ala roja qiyametê li ser serê mexlûqa wê gazî wî bike û wê wî di wergirtina kîjan kincê îmanê hezbike de mûxeyyer bike." *Tirmizi rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ التَّوَسُّطِ فِي اللِّبَاسِ
## WERGIRTINA KINCÊN NORMAL

٨٠٣-عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (إِنَّ اللَّهَ يُحِبُّ أَنْ يَرَى أَثَرَ نِعْمَتِهِ عَلَى عَبْدِهِ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

803- Ji 'Emrê kurê Şu'eyb, ji bavê wî, ji kalkê wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bêguman Xweda te'ala hezdike ku eserê nîmetên xwe li ser 'ebdê xwe bibîne." *Tirmizi rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ تَحْرِيم لِبَاس الْحَرِير عَلَى الرِّجَالِ
## WERGIRTINA KINCÊN HEVRÎŞIM

٨٠٤- عُنْ عُمَرَ بْنِ الْخطَّابِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَلْبَسُوا الْحَرِيرَ فَإِنَّ مَنْ لَبِسَهُ فِي الدُّنْيَا لَمْ يَلْبَسْهُ فِي الآخِرَةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

804- Ji 'Emerê kurê Xettab (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn kincên hevrîşim wernegirin. Lewra kesê wî di dunyayê de wergire di axîretê de wernagire." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٠٥- وَعَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّمَا يَلْبَسُ الْحَرِيرَ مَنْ لَا خَلَاقَ لَهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

805- Dîsa ji wî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: "Ancax kesê ku ji axîretê bêpar e cilê hevrîşim werdigire." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٠٦- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (مَنْ لَبِسَ الْحَرِيرَ فِي الدُّنْيا لَمْ يَلْبَسْهُ فِي الآخِرَةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

806- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê di dunyayê de hevrîşim wergire di axîretê de wernagire." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٠٧- وَعَنْ عَلِيٍّ ﷺ قَالَ: رَأَيْتُ رَسُولَ الله ﷺ أَخَذَ حَرِيراً، فَجَعَلَهُ فِي يَمِينِهِ، وَذَهَباً فَجَعَلَهُ فِي شِمَالِهِ، ثُمَّ قَالَ: (إِنَّ هَذَيْنِ حَرَامٌ عَلَى ذُكُورِ أُمَّتِي). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

807- Ji 'Elî (r.), got: Min Pêxemberê Xwedê (s.) dît hinek hevrîşim rakir û danî destê xwe yê rastê û hinek zêr jî rakir û danî destê xwe yê çepê û got: "Ev her du li ser mêran heram in." *Ebû Dawûd bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

٨٠٨- وَعَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (حُرِّمَ لِبَاسُ الحَرِيرِ وَالذَهَبِ عَلَى ذُكُورِ أُمَّتِي، وَأُحِلَّ لِإِنَاثِهِمْ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

808- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wergirtina hevrîşim û zêr ji zilamê ummeta min re hatiye heram kirin û ji jinê ummeta min re hatiye helal kirin." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

٨٠٩- وَعَنْ حُذَيْفَةَ ﷺ قَالَ: نَهَانَا النَّبِيُّ ﷺ أَنْ نَشْرَبَ فِي آنِيَةِ الذَّهَبِ وَالْفِضَّةِ، وَأَنْ نَأْكُلَ فِيهَا، وَعَنْ لُبْسِ الحَرِيرِ وَالدِّيبَاجِ، وَأَنْ نَجْلِسَ عَلَيْهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

809- Ji Huzeyfe (r.), got: Pêxember (s.) men'a me ji vexwarin û xwarina di firaxê zêr û zîv de, ji wergirtina hevrîşim û etlesê û ji rûniştandina li ser vana kir. *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ جَوَازِ لِبْسِ الْحَرِيرِ لِمَنْ بِهِ حَكَّةٌ
## WERGIRTINA HEVRÎŞIM JI BO WÎ KESÊ KU PÊ RE XUR HEYE

٨١٠- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: رَخَّصَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لِلزُّبَيْرِ وَعَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ عَوْفٍ ﷺ فِي لُبْسِ الْحَرِيرِ لِحِكَّةٍ كَانَتْ بِهِمَا. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

810- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji Zubeyr û ji ‘Ebdurrehmenê kurê Ewf (r.) re di wergirtina hevrîşimê de destûr da ji ber ku di wan de xurîn hebû. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ النَّهْيِ عَنْ إِفْتِرَاشِ جُلُودِ النُّمُورِ
## RAXISTINA ÇERMÊ PILINGA

٨١١- عَنْ مُعَاوِيَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَا تَرْكَبُوا الخَزَّ وَلَا النِّمَارَ).

رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَغَيْرُهُ بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

811- Ji Mu‘awiye (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn li wî zînê ku ji hevrîşim û ji postê pilingê ye siwar nebin.” *Ebû Dawûd û xeynê wî bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

٨١٢- وَعَنْ أَبِي الْمَلِيحِ عَنْ أَبِيهِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ نَهَى عَنْ جُلُودِ السِّبَاعِ.

رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي بِأَسَانِيدَ صِحَاحٍ.

وَفِي رِوَايَةٍ لِلتِّرْمِذِيِّ: نَهَى عَنْ جُلُودِ السِّبَاعِ أَنْ تُفْتَرَشَ.

812- Ji Ebul-Melîh, ewî jî ji bavê xwe (r.) rîwayet kiriye ku Pêxemberê Xwedê (s.) men‘a ji postê heywanê dirrende kiriye. *Ebû Dawûd û Tirmizî û Nesaî bi senedeke sehîh rîwayet kirine.*

Di rîwayeta Tirmizî de: Pêxemberê Xwedê (s.) men‘a ji raxistina postê heywanê dirrende kiriye.

## بَابُ مَا يَقُولُ إِذَا لَبِسَ ثَوْباً جَدِيداً

## WERGIRTINA KINCÊN NÛ

٨١٣- عَنْ أَبِي سَعِيد الخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا اسْتَجَدَّ ثَوْباً سَمَّاهُ بِاسْمِهِ عِمَامَةً، أَوْ قَمِيصاً، أَوْ رِدَاءً يَقُولُ: (اللَّهُمَّ لَكَ الْحَمْدُ أَنْتَ كَسَوْتَنِيهِ، أَسْأَلُكَ خَيْرَهُ وَخَيْرَ مَا صُنِعَ لَهُ، وَأَعُوذُ بِكَ مِنْ شَرِّهِ وَشَرِّ مَا صُنِعَ لَهُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

813- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wextê kincek; şaşik an kiras an jî kurkekî nû wergirta navê wê dihanî û digot: "Xweda! Ji te re hemd û sena be. Te ev kinc li min kir. Ez ji te xêra wê û xêra wî tişta ku ji bona wî hatiye çêkirin dixwazim. Ez bi te xwe ji xerabiya wê û ji xerabiya wî tiştê ku ji bona wî hatiye çêkirin diparêzim." *Ebû Dawûd û Tirmizî riwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

  

# كِتَاب آدَاب النَّوْم
# KITÊBA ADABÊ RAZANÊ

٨١٤- عَنْ الْبَرَاءِ بْنِ عَازِبٍ ﷺ قَالَ: كانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا أَوَى إِلَى فِرَاشِهِ نَامَ عَلَى شَقِّهِ الأَيْمَنِ، ثُمَّ قَالَ: (اللَّهُمَّ أَسْلَمْتُ نَفْسِي إِلَيْكَ، وَوَجَّهْتُ وَجْهِي إِلَيْكَ، وَفَوَّضْتُ أَمْرِي إِلَيْكَ، وَأَلجَأْتُ ظَهْرِي إِلَيْكَ، رَغْبَةً وَرَهْبَةً إِلَيْكَ، لَا مَلجَأَ وَلَا مَنْجى مِنْكَ إِلَّا إِلَيْكَ. آمَنْتُ بِكِتَابِكَ الَّذِي أَنْزَلْتَ، وَنَبِيِّكَ الَّذِي أَرْسَلْتَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

814- Ji Berayê kurê 'Azib (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wextê biketa nav ciyê xwe li ser kêleka xwe ya rastê radiza. Piştre jî wiha digot: "Xweda! Min xwe teslîmî te kir, min berê xwe da te, min kar û kiryarê xwe sparte te, min ji daxwaz û tirsa te pişta xwe bi te girêda, ji xeynê te spartek û hêwirgeh tune. Min bi kitêba te ya ku te nazil kiriye û bi pêxemberê te yê ku te şandiye bawerî aniye." *Buxarî riwayet kiriye.*

٨١٥- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ الله ﷺ: (إِذَا أَتَيْتَ مَضْجَعَكَ، فَتَوَضَّأْ وُضُوءَكَ لِلصَّلَاةِ، ثُمَّ اضْطَجِعْ عَلَى شِقِّكَ الأَيْمَنِ، وَقُلْ وَذَكَرَ نَحْوَهُ، وَفِيهِ: (وَاجْعَلْهُنَّ آخِرَ مَا تَقُولُ) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

815- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Wextê tuyê bikevî nav ciyê xwe, wekî destnimêja ji bo nimêje digrî, destnimêj

bigre. Paşê xwe li ser kêleka xwe ya çepê dirêj ke û bêje: .... Wekî duayê derbas bû vegot. Lê di vê de ev zêde bû: “Tu evan bike dawiya gotina xwe.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨١٦- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يُصَلِّي مِنَ اللَّيْلِ إِحْدَى عَشْرَةَ رَكْعَةً، فَإِذَا طَلَعَ الْفَجْرُ صَلَّى رَكْعَتَيْنِ خَفِيفَتَيْنِ، ثُمَّ اضْطَجَعَ عَلَى شِقِّهِ الأَيمَن حَتَّى يَجِيءَ الْمُؤَذِّنُ فَيُؤْذِنَهُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

816- Ji ‘Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) bi şev yanzdeh rekat nimêj dikir. Wextê berbang derdiket du rekatên kurt dikirin. Paşê xwe li ser kêleka xwe ya rastê dirêj dikir heta muezzîn dihat bang dida. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨١٧- وَعَنْ حُذَيْفَةَ ﵁ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ إِذَا أَخَذَ مَضْجَعَهُ مِنَ اللَّيْلِ وَضَعَ يَدَهُ تَحْتَ خَدِّهِ، ثُمَّ يَقُولُ: (اللَّهُمَّ بِاسْمِكَ أَمُوتُ وَأَحْيَا) وَإِذَا اسْتَيْقَظَ قَالَ: (الْحَمْدُ لِلهِ الَّذِي أَحْيَانَا بَعْدَماَ أَمَاتَنَا وَإِلَيْهِ النُّشُورُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

817- Ji Huzeyfe (r.), got: Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) ciyê xwe bigirta ji bo razanê destê xwe datanî bin lamê/sûretê xwe û piştre jî wiha digot: “Xweda! Bi navê te ez dimrim û sax dibim.” Û wextê hişyar bibûya jî wiha digot: “Hemd ji wî Xwedayê ku piştî me dimirîne me sax dike re ye. Û her vegerandin bi bal wî ve ye.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

٨١٨- وَعَنْ يَعِيش بْنِ طِخْفَةَ الْغِفَارِيِّ ﵁ قَالَ: قَالَ أَبِي: بَيْنَما أَنَا مُضْطَجِعٌ فِي الْمَسْجِدِ عَلَى بَطْنِي إِذَا رَجُلٌ يُحَرِّكُنِي بِرِجْلِهِ فَقَالَ: (إِنَّ هَذِهِ ضِجْعَةٌ يُبْغِضُهَا الله) قَالَ: فَنَظَرْتُ، فَإِذَا رَسُولُ الله ﷺ. رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

818- Ji Ye‘îşê kurê Tixfeyê Xiffarî (r.), got: Bavê min got: Carekê min li mizgeftê xwe li ser zikê xwe dirêj kiribû, min lê nihêrî mirovek bi piyê xwe min dilebitîne û ewî got: “Ev dirêjkirina hanê Xwedê te‘ala jê dikerihîne.” Min li wî mirovî nihêrî, ew Pêxemberê Xwedê (s.) bû. *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

٨١٩- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ قَعَدَ مَقْعَداً لَمْ يَذْكُرِ تَعَالَى الله فِيهِ، كَانَتْ عَلَيْهِ مِنَ الله تِرَةٌ، وَمَنِ اضْطَجَعَ مَضْجَعاً لَا يَذْكُرُ الله تَعَالَى فِيهِ، كَانَتْ عَلَيْهِ مِنَ اللَّهِ تِرَةٌ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

819- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Kî di cîhekî de rûnê û di wî cihî de navê Xwedê bi bîr neyîne bi sedem vê yekê derbarê Xwedê de tiştek kêm kiriye û kî di cîhekî de xwe dirêj ke û di wî cihî de navê Xwedê bi bîr neyîne bi sedem vê yekê derbarê Xwedê de tiştekî kêm kiriye.” *Ebû Dawûd bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

## بَابُ جَوَازِ الإِسْتِلْقَاءِ عَلَى الْقَفَا

## RAKETINA LI SER PIŞTÊ Û AVÊTINA PIYEKÎ LI SER YÊ DINÊ

٨٢٠- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ زَيْدٍ ﷺ أَنَّهُ رَأَى رَسُولَ الله ﷺ مُسْتَلْقِياً فِي المَسْجِدِ، وَاضِعاً إِحْدَى رِجْلَيْهِ عَلَى الأُخْرَى. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

820- Ji ‘Ebdullahê kurê Zeyd (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî dîtiye Pêxemberê Xwedê (s.) di mizgeftê de li ser piştê xwe dirêj kiriye û piyekî xwe avêtiye ser piyê din. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٢١- وَعَنْ جَابِرِ بْنِ سَمُرَةَ ﷺ قَالَ: كَانَ النَّبِيّ ﷺ إِذَا صَلَّى الْفَجْرَ تَرَبَّعَ فِي مَجْلِسِهِ حَتَّى تَطْلُعَ الشَّمْسُ حَسْنَاءَ. رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

821- Ji Cabirê kurê Semure (r.), got: Pêxember (s.) wextê nimêja sibehê bikira heta roj tam derketa di ciyê rûniştandina xwe de çarmêrkî rûdinişt. *Ebû Dawûd bi senedeke sehih rîwayet kiriye.*

٨٢٢- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: رَأَيْتُ رَسُولَ الله ﷺ بِفِنَاءِ الْكَعْبَةِ مُحْتَبِياً بِيَدَيْهِ هَكَذَا، وَوَصَفَ بِيَدَيْهِ الاحْتِبَاءَ، وَهُوَ الْقُرْفُصَاءُ. رَوَاهُ البُخَارِي.

822- Ji Îbnu ‘Umer (r.), got: Min dît Pêxemberê Xwedê (s.) di hewşa ke‘be de bi her du destê xwe çokê xwe wiha hemêz kiribû.

Rawî dibêje, Îbn ‘Umer bi her du destê xwe ew rûniştin nîşan da. Ji wê rûniştinê re qurfusa’[1] tê gotin. *Buxarî rîwayet kiriye.*

1 **qurfusa’**: rûniştina li ser kulêmekan û bi her du destan kişandina serçokan bi aliyê zik ve û hemêzkirina wan.

٨٢٣- وَعَنْ قَيْلَةَ بِنْتِ مَخْرَمَةَ ﵁ قَالَتْ: رَأَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ وَهُوَ قَاعِدٌ الْقُرْفُصاءَ، فَلَمَا رَأَيْتُ رَسُولَ الله ﷺ الْمُتَخَشِّعَ فِي الْجِلْسَةِ أُرْعِدْتُ مِنَ الفَرَقِ. رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرمِذِي.

823- Ji Qeyleya keça Mexreme (r.), got: Min Pêxember (s.) dît ku bi awayê qurfusa rûniştibû. Wextê min Pêxemberê Xwedê (s.) wisa di rûniştinê de dilnizm dît ez ji tirsan lerizîm. *Ebû Dawûd û Tirmizî riwayet kirine.*

٨٢٤- وَعَنِ الشَّرِيد بْنِ سُوَيدٍ ﵁ قَالَ: مَرَّ بِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَأَنَا جَالِسٌ هَكَذَا، وَقَدْ وَضَعْتُ يَدِيَ الْيُسْرَى خَلْفَ ظَهْرِي، وَاتَكَأْتُ عَلَى إِلْيَةِ يَدِي فَقَالَ: (أَتَقْعُدُ قِعْدَةَ الْمَغْضُوبِ عَلَيْهِمْ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

824- Ji Şerîdê kurê Suweyd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) di ber min re derbas bû û ez jî wiha rûniştina; min destê xwe yê çepê dabû pişt xwe û min pal dabû ser kefa destê xwe. Vêca ewî (s.) got: "Qey tu wekî rûniştina wan kesê ku Xwedê xezeb li wan kiriye rûdinî?" *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh riwayet kiriye.*

## بَابُ آدَابِ الْمَجْلِسِ وَالْجَلِيسِ
## ADABÊ CIVAT Û RÛNIŞTINÊ

٨٢٥- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﵄ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لا يُقِيمَنَّ أَحَدُكُمْ رَجُلاً مِنْ مَجْلِسِهِ ثُمَّ يَجْلِسُ فِيهِ، وَلَكِنْ تَوَسَّعُوا وَتَفَسَّحُوا) وَكَانَ ابْنِ عُمَرَ، إِذَا قَامَ لَهُ رَجُلٌ مِنْ مَجْلِسِهِ لَمْ يَجْلِسْ فِيهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

825- Ji kurê' Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bila tu kes ji we kesî ji ciyê wî raneke û li ciyê wî rûnene. Lêbelê hûn cih vekin û fireh bikin."

Îbnu 'Umer (r.), wextê ji cema'etê yek ber wî rabûya û ciyê xwe bidayê li ciyê wî rûnedinişt. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٨٢٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﵁ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (إِذَا قَامَ أَحَدُكُمْ مِنْ مَجْلِسٍ ثُمَّ رَجَعَ إِلَيْهِ، فَهُوَ أَحَقُّ بِهِ). رَوَاهُ مُسْلِمْ.

826- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Wextê yek ji we ji ciyê xwe rabû û paşê dîsa zivirî û hat, ew mafdartir/pêşdatir e bi rûniştina wî cihî. *Muslim rîwayet kiriye.*

٨٢٧- وَعَنْ جَابِرِ بْنِ سَمُرَةَ ﷺ قَالَ: كُنَّا إِذَا آتَيْنَا النَّبِيَّ ﷺ جَلَسَ أَحَدُنَا حَيْثُ يَنْتَهِي. رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

827- Ji Cabirê kurê Semure (r.), got: Wextê em dihatin cem Pêxember (s.) me li kuderê cîhek vala bidîta em li wê derê rûdiniştin. *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

٨٢٨- وَعَنْ أَبِي عَبْدِ اللَّهِ سَلْمَانَ الْفَارِسِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (لَا يَغْتَسِلُ رَجُلٌ يَوْمَ الْجُمُعَةِ، وَيَتَطَهَّرُ مَا اسْتَطَاعَ مِنْ طُهْرٍ، وَيَدَّهِنُ مِنْ دُهْنِهِ، أَوْ يَمَسُّ مِنْ طِيبِ بَيْتِهِ، ثُمَّ يَخْرُجُ فَلا يُفَرِّقُ بَيْنَ اثْنَيْنِ، ثُمَّ يُصَلِّي مَا كُتِبَ لَهُ، ثُمَّ يُنْصِتُ إِذَا تَكَلَّمَ الإِمَامُ، إِلَّا غُفِرَ لَهُ مَا بَيْنَهُ وَبَيْنَ الْجُمُعَةِ الأُخْرَى). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

828- Ji Ebû 'Ebdullah Selmanê Farisî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Çi kesê roja înê serê xwe bişo, hingî bikaribe xwe paqij bike, bêhna xweş ya mala xwe li xwe bide, paşê bi rêkeve here mizgeftê, navbera du mirovan veneqetîne, paşê nimêja ku li ser ferz bûye bike û paşê jî heta îmam biaxive xwe ker bike miheqeq gunehê wî yê navbera wê înîna û îna li pey wê tê bexşandin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٨٢٩- وَعَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا يَحِلُّ لِرَجُلٍ أَنْ يُفَرِّقَ بَيْنَ اثْنَيْنِ إِلَّا بِإِذْنِهِمَا). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

829- Ji 'Emrê kurê Şu'eyb, ji bavê wî, ji kalkê wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Heta destûra wan tunebe ketina navbera du mirovan helal nîne." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

٨٣٠- وَعَنْ حُذَيْفَةَ بْنِ الْيَمَانِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ لَعَنَ مَنْ جَلَسَ وَسْطَ الْحَلْقَةِ. رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

وَرَوَى التِّرمِذِيُّ عَنْ أَبِي مِجْلَزٍ: أَنَّ رَجُلاً قَعَدَ وَسْطَ حَلْقَةٍ، فَقَالَ حُذَيْفَةُ: مَلْعُونٌ عَلَى لِسَانِ مُحَمَّدٍ ﷺ أَوْ: لَعَنَ الله عَلَى لِسَانِ مُحَمَّدٍ مَنْ جَلَسَ وَسْطَ الحَلْقَةِ. قَالَ التِّرْمِذِي: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

830- Ji Huzeyfeyê kurê Yeman (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) lanet li wî kesê ku di navbera/orta civatê de rûdinê aniye. *Ebû Dawûd bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

Tirmizî ji Ebû Miclez rîwayet kiriye ku mirovek di navbera civatê de rûnişt, vêca Huzeyfe got: Li ser zimanê Hz. Muhemmed (s.) hatiye lanet kirin an jî Xweda te'ala li ser zimanê Hz. Muhemmed (s.) lanet kiriye li wî kesî ku di navbera civatê de rûdine. *Tirmizî gotiye hedîsek baş û sehîh e.*

٨٣١- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (خَيْرُ الْمَجَالِسِ أَوْسَعُهَا). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ عَلَى شَرْطِ الْبُخَارِيِّ.

831- Ji Ebû se'îdê Xudrî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: "Baştirînê civatan, ya herî fireh e." *Ebû Dawûd ser şertê Buxarî bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

٨٣٢- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ جَلَسَ فِي مَجْلِسٍ فَكَثُرَ فِيهِ لَغَطُهُ، فَقَالَ قَبْلَ أَنْ يَقُومَ مِنْ مَجْلِسِهِ ذَلِكَ: سُبْحَانَكَ اللَّهُمَّ وَبِحَمْدِكَ أَشْهَدُ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا أَنْتَ، أَسْتَغْفِرُكَ وَأَتُوبُ إِلَيْكَ، إِلَّا غُفِرَ لَهُ مَا كَانَ فِي مَجْلِسِهِ ذَلِكَ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

832- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî di civatekê de rûne û di wê derê de xeletiyê wî pir çêbin, vêca beriya ku ew ji wê civatê rabe bêje: Xwedayo! Ez te tenzîh dikim û bi hemdê te, te dipesinînim. Bawer dikim ji xeynê te tu Xwedê tune, ez daxwaza bexşandinê ji te dikim û tobe dikim. Miheqeq xeletiyê wî yê di wê civatê de çêbûye tê bexşandin." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

٨٣٣- وَعَنْ أَبِي بَرْزَةَ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ بِآخَرَةٍ إِذَا أَرَادَ أَنْ يَقُومَ مِنَ المَجْلِسِ: (سُبْحَانَكَ اللَّهُمَّ وَبِحَمْدِكَ أَشْهَدُ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا أَنْتَ، أَسْتَغْفِرُكَ وَأَتُوبُ إِلَيْكَ)

  

فَقَالَ رَجُلٌ: يَا رَسُول الله إِنَّكَ لَتَقُولُ قَوْلاً مَا كُنْتَ تَقُولُهُ فِيمَا مَضَى، قَالَ: (ذَلِكَ كَفَّارَةٌ لِمَا يَكُونُ فِي الْمَجْلِسِ) رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالْحَاكِم مِنْ رِوَايَةِ عَائِشَةَ وَقَالَ: صَحِيحُ الإِسْنَادِ.

833- Ji Ebû Berze (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wextê bixwesta ji civatê rabe di dawiyê de digot: "Xweda! Ez te tenzîh dikim û bi hemdê te, te dipesinînim. Bawer dikim ji xeynê te tu Xwedê tune, ez daxwaza bexşandinê ji te dikim û tobe dikim." Vêca mirovekî got: Ya Pêxemberê Xwedê, bêguman tu gotinekî dibêjî ku te berê ew nedigot? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ev dua kefaret e ji bo wî gunehê ku di wê civatê de çêbûye." *Ebû Dawûd û Hakim ji rîwayeta Aişe'yê bi senedeke sehîh rîwayet kirine.*

٨٣٤- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: قَلَّمَا كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَقُومُ مِنْ مَجْلِسٍ حَتَّى يَدْعُوَ بِهَؤُلَاءِ الدَّعَوَاتِ: (اللَّهُمَّ اقْسِمْ لَنَا مِنْ خَشْيَتِكَ مَا تَحُولُ بِهِ بَيْنَنَا وَبَيْنَ مَعَاصِيكَ، وَمِنْ طَاعَتِكَ مَا تُبَلِّغُنا بِهِ جَنَّتَكَ، وَمِنَ الْيَقِينِ مَا تُهَوِّنُ بِهِ عَلَينَا مَصَائِبَ الدُّنْيَا، اللّهَمُ مَتِّعنَا بِأَسْمَاعِنَا، وَأَبصَارِنَا، وَقُوَّتِنَا مَا أَحْيَيْتَنَا، وَاجْعَلْهُ الْوَارِثَ مِنَّا، وَاجْعَلْ ثَأْرَنَا عَلَى مَنْ ظَلَمَنَا، وَانْصُرْنَا عَلَى مَنْ عَادَانَا، وَلَا تَجْعَل مُصِيبَتَنَا فِي دِينِنَا، وَلَا تَجعَلِ الدُّنْيَا أَكْبَرَ هَمِّنَا، وَلَا مَبْلَغَ عِلْمِنَا، وَلَا تُسَلِّطْ عَلَيْنَا مَنْ لَا يَرْحَمُنَا). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

834- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) heta ev duayên hanê nekirana ji nav civatê dernediket: "Xweda! Tu ji tirsa xwe parekê bide me da ku bi sedem wê navbera me û gunehan veqete, ji taetê xwe jî parekê bide me ku bi sedem wê em bigihêjine cennetê û tu ji yeqînê jî parekê bidî me ku bi sedem wê ji me re hêsan be qedayê dunyayê. Xwedayo! Heta em bijîn tu me ji guh, çav û quweta me bê par nekî, tu vê bixî warisê me, tu tol û heyfa me ji kesê ku zordestiyê li me dikin bistînî, tu me rizgar bikî li ser neyarê me, tu qeda û musibeta nexî dînê me û kesê ku dilê wan bi me naşewite miseletî ser serê me nekî." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

٨٣٥- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا مِنْ قَوْمٍ يَقُومُونَ مِنْ مَجْلِسٍ لَا يَذْكُرُونَ اللَّهَ تَعَالَى فِيهِ، إِلَّا قَامُوا عَنْ مِثْلِ جِيفَةِ حِمَارٍ، وَكَانَ لَهُمْ حَسْرَةً).

رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

835- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Qewmê ku ji civatê rabe û navê Xwedê te'ala di wir de bi bîr neanîbe her wekî ji ser kerê mirarbûyî rabûye û ji wan re dibe xem." *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

٨٣٦- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَا جَلَسَ قَوْمٌ مَجْلِساً لَمْ يَذْكُرُوا الله تَعَالَى فِيهِ، ولَمْ يُصَلُّوا عَلَى نَبِيِّهِم فِيهِ، إِلَّا كَانَ عَلَيْهِمْ تِرَةٌ، فَإِنْ شَاءَ عَذَّبَهُمْ، وَإِنْ شَاءَ غَفَرَ لَهُم).

رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

836- Dîsa ji wî (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Qewmek di civatekê de rûnê di wir de navê Xwedê te'ala bi bîr neyîne û li ser Pêxemberê xwe jî selewata nebêje ancax ev yeka ji wan re kêmasiyek e; vêca Xwedê te'ala bixwaze wê ezab bide wan û eger bixwaze jî wê ewan bibexşîne." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

٨٣٧- وَعَنْهُ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ قَعَدَ مَقْعَداً لَمْ يَذْكُرِ اللَّهَ تَعَالَى فِيهِ كَانَتْ عَلَيْهِ مِنَ الله تِرَةٌ، وَمَنِ اضطَجَعَ مَضْجَعاً لَا يَذْكُرُ اللَّهُ تَعَالَى فِيهِ كَانَتْ عَلَيْهِ مِنَ اللَّهِ تِرَةٌ).

رَوَاهُ أَبُو دَاوُد.

837-Dîsa ji wî (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê li cîhekî rûne û di wir de navê Xwedê te'ala bi bîr neyîne ji aliyê Xwedê ve dibe kêmasî û kesê ku di cîhekî de xwe dirêj bike û di wir de navê Xwedê te'ala bi bîr neyîne ji aliyê Xwedê ve dibe kêmasî." *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

## بَابُ الرُّؤْيَا وَمَا يَتَعَلَّق بِهَا
## XEWN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَمِنْ آيَاتِهِ مَنَامُكُمْ بِاللَّيْلِ وَالنَّهَارِ﴾

"Ji nîşanê Xwedê te'ala ye razana we ya şevê û rojê."[1]

٨٣٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (لَمْ يَبْقَ مِنَ النُّبُوَّةِ إِلَّا

1 Rûm, 30/23.

الْمُبَشِّرَاتُ) قَالُوا: وَمَا الْمُبَشِّرَاتُ؟ قَالَ: (الرُّؤْيَا الصَّالِحَةُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

838- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: "Ji pêxemberiyê/nubuwetê bes mizgîndar bi tenê mane." Eshaban gotin: Mizgîndar çi ne? Ewî (s.) got: "Xewnê pak in." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٨٣٩- وَعَنْهُ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (إِذَا اقْتَرَبَ الزَّمَانُ لَمْ تَكَدْ رُؤْيَا الْمُؤْمِنِ تَكْذِبُ، وَرُؤْيَا الْمُؤْمِنِ جُزْءٌ مِنْ سِتَّةٍ وَأَرْبَعِينَ جُزْءاً مِنَ النُّبُوَّةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: (أَصْدَقُكُمْ رُؤْيَا أَصْدَقُكُمْ حَدِيثاً)

839- Dîsa ji wî (r.), hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Wextê qiyamet nêzîk dibe xewna mu'min kêm caran nerast derdikeve û xewna mumin jî perçeyek ji çil û şeş perçê pêxemberiyê ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayetekê de: "Rasttirê we, ji aliyê xewna ve rastbêje we ye."

٨٤٠- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ رَآنِي فِي الْمَنَامِ فَسَيَرَانِي فِي الْيَقَظَةِ، أَوْ كَأَنَّمَا رَآنِي فِي الْيَقَظَةِ لَا يَتَمَثَّلُ الشَّيْطَانُ بِي). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

840- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Çi kesê min di xewnê de bibîne ewê min di hişyariyê de jî bibîne û yan jî; her wekî ewî ez di hişyariyê de dîtime lewra şeytan nakeve şiklê min." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٤١- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: (إِذَا رَأَى أَحَدُكُمْ رُؤْيَا يُحِبُّهَا، فَإِنَّمَا هِيَ مِنَ اللَّهِ تَعَالَى، فَلْيَحْمَدِ اللَّهَ عَلَيْهَا، وَلْيُحَدِّثْ بِهَا).

وَفِي رِوَايَةٍ: (فَلَا يُحَدِّثْ بِهَا إِلَّا مَنْ يُحِبُّ وَإِذَا رَأَى غَيْرَ ذَلِكَ مِمَّا يَكْرَهُ، فَإِنَّمَا هِيَ مِنَ الشَّيْطَانِ، فَلْيَسْتَعِذْ مِنْ شَرِّهَا، وَلَا يَذْكُرْهَا لِأَحَدٍ، فَإِنَّهَا لَا تَضُرُّهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

841- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Pêxember (s.) bihîstiye wiha digot: "Wextê yekî ji we xewnek xweş dît, ew ancax ji Xwedê ye, bila bi sedem wê hemdê Xwedê bike û bila pê biaxive."

Di rîwayetekê de: "Bila xewna xwe bes ji wî kesê ku jê hezdike re bêje." Û wextê xewnek nexweş dît, ew ancax ji şeytan e, bila xwe ji xerabiyên

şeytan biparêze û xwe bispêre Xwedê û bila wê xewna xwe ji tu kesî re nebêje. Lewra ew xewn bi vî awayî zerarê nadiyê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٤٢- وَعَنْ أَبِي قَتَادَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (الرُّؤيَا الصَّالِحَةُ) وَفِي رِوَايَةٍ: (الرُّؤيَا الْحَسَنَةُ مِنَ الله، وَالْحُلْمُ مِنَ الشَّيْطَانِ، فَمَنْ رَأَى شَيْئاً يَكْرَهُهُ فَلْيَنْفُثْ عَنْ شِمَالِهِ ثَلَاثاً، وَلْيَتَعَوَّذْ مِنَ الشَّيطَانِ فَإِنَّهَا لَا تَضُرُّهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

842- Ji Ebû Qetade (r.), got: Pêxember (s.) gotiye: "Xewna pak –di rîwayetekê de: 'Xewna rind'– ji Xwedê ye û xewna nebaş jî ji şeytan e. Vêca kesê ku tiştek xerab dît bila sê caran tif aliyê xwe yê çepê bike û bila xwe ji şeytanî biparêze. Lewra ew xewn bi vî awayî zerarê nadiyê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٤٣- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا رَأَى أَحَدُكُمُ الرُّؤْيَا يَكْرَهُهَا، فَلْيَبْصُقْ عَنْ يَسَارِهِ ثَلَاثاً، وَلْيَسْتَعِذْ بِاللَّهِ مِنَ الشَّيْطَانِ ثَلَاثاً، وَلْيَتَحَوَّلْ عَنْ جَنْبِهِ الَّذِي كَانَ عَلَيْهِ).

رَوَاهُ مُسْلِم.

843- Ji Cabir (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Wextê yekî ji we xewnek nexweş dît bila sê caran tif bike aliyê xwe yê çepê, bila xwe ji şeytan biparêze û bila ji kêleka xwe ya ku ew li ser e bizivire ser kêleka din." *Muslim rîwayet kiriye.*

٨٤٤- وَعَنْ أَبِي الأَسْقَعِ وَاثِلَةَ بْنِ الأَسْقَعِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ مِنْ أَعْظَمِ الْفِرَي أَنْ يَدَّعِيَ الرَّجُلُ إِلَى غَيْرِ أَبِيهِ، أَوْ يُرِيَ عَيْنَهُ مَا لَمْ تَرَ، أَوْ يَقُولَ عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ مَا لَمْ يَقُلْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

844- Ji Ebul-Esqe' Wasileyê kurê Esqe' (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman mezintirînê iftîra ew e ku mirov xwe nîsbetî xeynê bavê xwe ve bike û yan jî tiştê ku di xewnê de nedîtî bêje min dîtiye yan jî li ser navê Pêxemberê Xwedê (s.) tiştê ku ewî (s.) negotî bêje." *Buxarî rîwayet kiriye.*

# كِتَاب السَّلَام
# KITÊBA SILAVÊ

## بَابُ فَضْلِ السَّلَامِ وَالأَمْرِ بِإِفْشَائِهِ
## FEZÎLETA SILAVÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا لَا تَدْخُلُوا بُيُوتاً غَيْرَ بُيُوتِكُمْ حَتَّى تَسْتَأْنِسُوا وَتُسَلِّمُوا عَلَى أَهْلِهَا﴾

"Gelî ewên bawerî anîne! Hûn neçine xaniyên ji xeynê xaniyê xwe heta ku hûn destûrê wernegirin û silav nekin li xwediyê wan (ku bêjin es-selamû eleykum.' Bême jor? Carekê û yan jî sê caran)."[1]

﴿فَإِذَا دَخَلْتُمْ بُيُوتاً فَسَلِّمُوا عَلَى أَنْفُسِكُمْ تَحِيَّةً مِنْ عِنْدِ اللَّهِ مُبَارَكَةً طَيِّبَةً﴾

"Vêca eger hûn çûne hinek malan, bi silava Xwedê ya ku dilveker e silavê bidine xwe."[2]

﴿وَإِذَا حُيِّيتُمْ بِتَحِيَّةٍ فَحَيُّوا بِأَحْسَنَ مِنْهَا أَوْ رُدُّوهَا﴾

"Heger ku silav li we hate kirin, hûn bersiva silavê çêtir bidin û yan jî wekî wê wergirin."[3]

---

1 Nûr, 24/27.
2 Nûr, 24/61.
3 Nîsa, 4/86.

﴿هَلْ أَتَاكَ حَدِيثُ ضَيْفِ إِبْرَاهِيمَ الْمُكْرَمِينَ ۞ إِذْ دَخَلُوا عَلَيْهِ فَقَالُوا سَلَاماً قَالَ سَلَامٌ﴾

"Erê behsa mêvanê Îbrahîm, ewê qedirgiran, gihîştiye te. Wextê çûne cem û silav lê kirin, silav li wan vegerand û got: Hûn nenas in (ez we nas nakim)."[1]

٨٤٥- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ أَنَّ رَجُلاً سَأَلَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ: أَيُّ الإِسْلَامِ خَيْرٌ؟ قَالَ: (تُطْعِمُ الطَّعَامَ، وَتَقْرَأُ السَّلَامَ عَلَى مَنْ عَرَفْتَ وَمَنْ لَمْ تَعْرِف). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

845- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî ji Pêxemberê Xwedê (s.) pirs kir: Kîjan ji kiryarê Îslamê qenctir e? Ewî (s.) got: "Tu xwarinê bidî û tu silav bidî kesê ku tu nas dikî û nas nakî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٤٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَمَّا خَلَقَ اللَّهُ تَعَالَى آدَمَ ﷺ قَالَ: اذْهَبْ فَسَلِّمْ عَلَى أُولَئِكَ - لِنَفَرٍ مِنَ الْمَلَائِكَةِ جُلُوسٍ- فاسْتَمع مَا يُحَيُّونَكَ، فَإِنَّهَا تَحِيَّتُكَ وَتَحِيَّةُ ذُرِّيَّتِكَ، فَقَالَ: السَّلَامُ عَلَيْكُمْ، فَقَالُوا: السَّلَامُ عَلَيْكَ وَرَحْمَةُ اللَّهِ، فَزَادُوهُ: وَرَحْمَةُ اللَّهِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

846- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê Xwedê te'ala Adem (e.) afirand wiha got: Tu here bal van –koma melekê rûniştî– û silavê li wan bide. Û tu guh bide ka ewê çawa bersîva te bidin. Lewra ew silav, silava te û silava wertê/zuriyeta te ye. Vêca ewî (s.) got: "Es-selamû 'eleykum (silav li ser we be)." Melekan jî: "Es-selamû 'eleyke we rehmetullahî (s.)." gotin û lefzê we rehmetullah zêde kirin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٤٧- وَعَنْ أَبِي عُمَارَةَ الْبَرَاءِ بْنِ عَازِبٍ ﷺ قَالَ: أَمَرَنَا رَسُولُ الله ﷺ بِسَبْعٍ: (بِعِيَادَةِ الْمَرِيضِ، وَاتِّبَاعِ الْجَنَائِزِ، وَتَشْمِيتِ الْعَاطِسِ، وَنَصْرِ الضَّعِيفِ، وَعَوْنِ الْمَظْلُومِ، وَإِفْشَاءِ السَّلَامِ، وَإِبْرَارِ الْقَسَمِ) رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

847- Ji Ebû 'Umare Bera'ê kurê 'Azib (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) heft tişt emrê me kir: Serlêdana nexweş, beşdarbûna cenaza, teşmîta[2] kesê

1 Zariyat, 51/24-25.

2 **Teşmît**: Mirovê ku dibênije bêje; *elhemdû lîllah*, û yê ku vê ya bibihîze bêje, *yerhemukellah* û ewê bihênijî dîsa bêje; *yehdîna we yehdîkumullah*.

ku dibênije, arîkariya belengazî, piştgiriya sîtembar/mezlûm, belavkirina silavê û pêkanîna daxwaziya sondxwarî. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٨٤٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَدْخُلُوا الْجَنَّةَ حَتَّى تُؤْمِنُوا، وَلَا تُؤْمِنُوا حَتَّى تَحَابُّوا، أَوَ لَا أَدُلُّكُمْ عَلَى شَيْءٍ إِذَا فَعَلْتُمُوهُ تَحَابَبْتُمْ؟ أَفْشُوا السَّلَامَ بَيْنَكُمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

848- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn heta bawer nekin hûn nakevine cennetê û heta hûn ji hevdu hez nekin jî hûn tam nabin bawermend. Ma ez tiştekî şanî we bidim ku gava hûn wî bikin, hûnê ji hevdu hez bikin? Silavê di navbera xwe de belav bikin." *Muslim riwayet kiriye.*

٨٤٩- وَعَنْ أَبِي يُوسفَ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ سَلَامٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (يَا أَيُّهَا النَّاسُ أَفْشُوا السَّلَامَ، وَأَطْعِمُوا الطَّعَامَ، وَصِلُوا الأَرْحَامَ، وَصَلُّوا وَالنَّاسُ نِيَامٌ، تَدْخُلُوا الْجَنَّةَ بِسَلَامٍ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ صَحِيحٌ.

849- Ji Ebû Yûsuf 'Ebdullahê kurê Selam (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: "Gelî însanan! Hûn silavê di navbera xwe de belav kin, xwarinê bidin xwarin, seriya li mirovê xwe bidin, wextê însan di xewê de ne hûn nimêj bikin. Wextê hûn vana bikin hûnê bi xweşî bikevine cennetê." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye hedîs sehîh e.*

٨٥٠- وَعَنِ الطُّفَيْلِ بْنِ أُبَيِّ بْنِ كَعْبٍ أَنَّهُ كَانَ يَأْتِي عَبْد الله بْنِ عُمَرَ، فَيَغْدُو مَعَهُ إِلَى السُّوقِ، قَالَ: فَإِذَا غَدَوْنَا إِلَى السُّوقِ، لَمْ يَمُرَّ عَبدُ الله عَلَى سَقَّاطٍ وَلَا صَاحِبِ بَيْعَةٍ، وَلَا مِسْكِينٍ، وَلَا أَحَدٍ إِلَّا سَلَّمَ عَلَيْهِ، قَالَ الطُّفَيْلُ: فَجِئْتُ عَبْد الله بْنِ عُمَر يَوْماً، فَاسْتَتْبَعَنِي إِلَى السُّوقِ، فَقُلْتُ لَهُ: مَا تَصْنَعُ بِالسُّوقِ، وَأَنْتَ لَا تَقِفُ عَلَى الْبَيْعِ، وَلَا تَسْأَلُ عَنِ السِّلَعِ، وَلَا تَسُومُ بِهَا، وَلَا تَجْلِسُ فِي مَجَالِسِ السُّوقِ؟ وَأَقُولُ: اجْلِسْ بِنَا هَهُنا نَتَحَدَّثْ، فَقَالَ: يَا أَبَا بَطْنٍ -وَكَانَ الطُّفَيْلُ ذا بَطْنٍ- إِنَّمَا نَغْدُو مِنْ أَجْلِ السَّلَامِ، نُسَلِّمُ عَلَى مَنْ لَقِينَاهُ. رَوَاهُ مَالِك فِي الْمُوَطأ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

850- Ji Tufeylê kurê Ubeyê kurê Ke'b hatiye rîwayetkirin ku ew dihate bal 'Ebdullahê Îbnu 'Umer, di wextê sibehê de digel wî diçû sûkê. Tufeyl dibêje: Wextê em diketine sûkê 'Ebdullah di ber çi kesî re; çi ber firoşkarê xurde, çi yê tiştê bi rûmet û çi jî di ber belengazan re derbas bûya miheqeq silav didayê. Tufeyl dibêje: Rojekê ez hatim bal Îbn 'Umer, ewî ji min daxwaz kir ku ez jî pê re derkevime sûkê. Vêca min jî ji wî re got: Tuyê li sûkê çi bikî? Tu li ser kirrîn û firotinê nasekinî, pirsa biha nakî, bazarê nakî û di civatên bazarê de jî rûnanî. Ez dibêjim: Li vir digel me rûnê em bi hevdu re sohbet bikin. Li ser vê yekê ewî (r.) got: Zikmezino! –Tufeyl yekî zikê wî mezin bû– em bes ji bo xatirê silavê diçin sûkê û kesê em rastî wî bên silavê lê dikin. *Îmamê Malik di kitêba Muwetteyê de bi senedeke baş rîwayet kiriye.*

## بَابُ كَيْفِيَّةِ السَّلَام
## AWAYÊ SILAVDAYINÊ

يُسْتَحَبُّ أَنْ يَقُولَ الْمُبْتَدِئ بِالسَّلَامِ: السَّلَامُ عَلَيْكُمْ وَرَحْمَةُ اللَّهِ وَبَرَكَاتُهُ، فَيَأْتِي بِضَمِيرِ الْجَمْعِ وَإِنْ كَانَ الْمُسلَّمُ عَلَيْهِ وَاحِدًا، وَيَقُولُ الْمُجِيبُ: وَعَلَيْكُم السَّلَامُ وَرَحْمَةُ اللَّهِ وَبَرَكَاتهُ، فَيَأْتِي بِوَاوِ الْعَطْفِ فِي قَوْلِهِ: وَعَلَيْكُمْ.

Xêr e, kesê dest bi silavê bike wiha bêje: Es-selamû 'eleykum we rehmetullahî we berekatuhû. Kesê silav lê tê kirin çendan yek be jî bila pirane/cem'ê bêje. Bersîvdarê jî bi wawa 'etfê yê wiha bêje: We 'eleykumus-selam we rehmetullahî we berekatuhu.

Maneya silavê bi Kurdî ev e: Silav, rehmet û bereketa Xwedê li ser we be.

٨٥١- عَنْ عِمْرَانَ بْنِ الْحُصَيْنِ ﷺ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ: السَّلَامُ عَلَيْكُمْ، فَرَدَّ عَلَيْهِ ثُمَّ جَلَسَ، فَقَالَ النبيُّ ﷺ: (عَشْرٌ) ثُمَّ جَاءَ آخَرُ، فَقَالَ: السَّلَامُ عَلَيكُم وَرَحْمَةُ اللَّهِ، فَرَدَّ عَلَيْهِ فَجَلَسَ، فَقَالَ: (عِشْرُونَ) ثُمَّ جَاءَ آخَرُ، فَقَالَ: السَّلَامُ عَلَيكُمْ وَرَحْمَةُ اللَّهِ وَبَرَكَاتُهُ، فَرَدَّ عَلَيْهِ فَجَلَسَ، فَقَالَ: (ثَلَاثُونَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

851- Ji 'Îmranê kurê Husayn (r.), got: Mirovek hate bal Pêxember (s.) û got: Es-selamû 'eleykum. Pêxemberê Xwedê (s.) jî silava wî hilda, paşê ew mirov rûnişt. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Deh xêr kar kir." Paşê mirovek dîtir hat û got: Es-selamû 'eleykum we rehmetullah. Pêxemberê

Xwedê (s.) silava wî jî hilda û ew mirov rûnişt. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bîst xêr kar kir." Piştre mirovekî dîtir jî hat û ewî jî got: Es-selamû 'eleykum we rehmetullahî we berekatuhu. Pêxemberê Xwedê (s.) silava wî jî hilda û ew mirov jî rûnişt. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Sî xêr kar kir." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

٨٥٢- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: قَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (هَذَا جِبْرِيلُ يَقْرَأُ عَلَيْكِ السَّلَامَ) قَالَتْ: قُلْتُ: وَ﵇ وَرَحْمَةُ اللَّهِ وَبَرَكَاتُهُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

852- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Eva Cebraîl, li te silav dike." 'Aîşe (r.) dibêje: Min jî got: 'We 'eleyhîs-selam we rehmetullahî we berekatuhu. (Yanî; silav, rehmet û bereketa Xwedê li ser wî jî be.) *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٥٣- وَعَنْ أَنَسٍ ﵁ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ إِذَا تَكَلَّمَ بِكَلِمَةٍ أَعَادَهَا ثَلَاثاً حَتَّى تُفْهَمَ عَنْهُ، وَإِذَا أَتَى عَلَى قَوْمٍ فَسَلَّمَ عَلَيْهِمْ سَلَّمَ عَلَيْهِمْ ثَلَاثاً. رَوَاهُ الْبُخَارِي. وَهَذَا مَحْمُولٌ عَلَى مَا إِذَا كَانَ الْجَمْعُ كَثِيراً.

853- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) wextê gotinek bigota ew sê caran tekrar dikir da ku bê fêmkirin û wextê biçûya bal komekê sê caran silav dida wan. *Buxarî rîwayet kiriye.*

Ev tekrar wextê civat pir bûya dihate kirin.

٨٥٤- وَعَنِ الْمِقْدَادِ ﵁ فِي حَدِيثِهِ الطَّوِيلِ قَالَ: كُنَّا نَرْفَعُ لِلنَّبِيِّ ﷺ نَصِيبَهُ مِنَ اللَّبَنِ، فَيَجِيءُ مِنَ اللَّيْلِ، فَيُسَلِّمُ تَسْلِيماً لَا يُوقِظُ نَائِماً، وَيُسْمِعُ الْيَقْظَانَ، فَجَاءَ النَّبِيُّ ﷺ فَسَلَّمَ كَمَا كَانَ يُسَلِّمُ. رَوَاهُ مُسْلِم.

854- Ji Mîqdad (r.), di hedîsa wî ya dirêj de, dibêje: Me para Pêxember (s.) ya şîr jê re hildida. Vêca ew (s.) bi şev dihat, bi dengekî ku yê razayî hişyar neke û yê hişyar bibihîze silav dida. Vêca Pêxember (s.) rojekê hat û wekî her car silav kir. *Muslim rîwayet kiriye.*

٨٥٥- وَعَنْ أَسْمَاءَ بِنْتِ يَزِيدَ ﵂ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ مَرَّ فِي الْمَسْجِدِ يَوْماً، وَعُصْبَةٌ مِنَ

النِّسَاءِ قُعُودٌ، فَأَلْوَى بِيَدِهِ بِالتَّسْلِيمِ. رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ. فِي رِوَايَةِ أَبِي دَاوود (فَسَلَّمَ عَلَيْنَا).

855- Ji Esmaya keça Yezîd (r.) hatiye rîwayetkirin ku rojekê Pêxemberê Xwedê (s.) di ber mizgeftê re derbas bû û komeke jinan jî rûniştibûn. Pêxemberê Xwedê (s.) bi destê xwe silav da wan.

Di rîwayeta Ebû Dawûd de: Pêxemberê Xwedê silav da me. *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

٨٥٦- وَعَنْ أَبِي جُرَيٍّ الْهُجَيْمِيِّ ﷺ قَالَ: أَتَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَقُلْتُ: عَلَيْكَ السَّلَامُ يا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: (لَا تَقُل عَلَيْكَ السَّلَامُ، فإِنَّ عَلَيْكَ السَّلَامُ تَحِيَّةُ الْمَوْتَى). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

856- Ji Ebû Cureyyê Huceymiyy (r.), got: Ez hatim bal Pêxemberê Xwedê (s.) û min got: 'Eleykes-selam ya Resûlellah. Vêca ewî (s.) got "Tu nebêje: 'Eleykes-selam, lewra 'eleykes-selam, silava miriyan e." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

## بَابُ آدَابِ السَّلَامِ

## ADABÊ SILAVÊ

٨٥٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (يُسَلِّمُ الرَّاكِبُ عَلَى الْمَاشِي، وَالْمَاشِي عَلَى الْقَاعِدِ، وَالْقَلِيلُ عَلَى الْكَثِيرِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِلْبُخَارِيِّ: (وَالصَّغِيرُ عَلَى الْكَبِيرِ).

857- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wê kesê siwar silavê bide yê peya, kesê dimeşe wê silavê bide yê rûniştî û mirovê hindik jî wê silavê bidin yê zehf." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di rîwayeteka Buxarî de: "Piçûk wê silavê bide mezin."

٨٥٨- وَعَنْ أَبِي أُمَامَةَ صُدَيِّ بْنِ عِجْلَانَ الْبَاهِلِي ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ أَوْلَى النَّاسِ بِاللَّهِ مَنْ بَدَأَهم بِالسَّلَامِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ جَيِّدٍ.

ورَوَاهُ التِّرمِذِي عَنْ أَبِي أُمَامَةَ قِيلَ: يَا رَسُولَ الله الرَّجُلَانِ يَلْتَقِيَانِ أَيُّهُمَا يَبْدَأُ بِالسَّلَامِ؟ قَالَ: (أَوْلَاهُمَا بِاللَّهِ تَعَالَى) قَالَ التِّرْمِذِي: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

858- Ji Ebû Umame Sudeyyê kurê ‘Eclanê Bahilî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Bêguman qenctirînê însanan li bal Xwedê te‘ala, ew kes e ku pêşiyê dest bi silavê dike.” *Ebû Dawûd bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

Tirmizî ji Ebû Umame (r.) rîwayet kiriye ku hatiye gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Wextê du mirov rastî hevdu hatin kîjan wê pêşî silavê bide? Ewî (s.) got: “Yê nêzîktirê Xwedê.” *Tirmizî gotiye hedîs rind e.*

## بَابُ اِسْتِحْبَابِ إِعَادَةِ السَّلاَمِ
## MUSTEHEBBÛNA HILDANA SILAVÊ

٨٥٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ فِي حَدِيثِ الْمُسِيءِ صَلاَتَهُ أَنَّهُ جَاءَ فَصَلَّى، ثُمَّ جَاءَ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَسَلَّمَ عَلَيْهِ، فَرَدَّ ﷺ، فَقَالَ: (ارْجِعْ فَصَلِّ، فَإِنَّكَ لَمْ تُصَلِّ) فَرَجَعَ فَصَلَّى، ثُمَّ جَاءَ فَسَلَّمَ عَلَى النَّبِيِّ ﷺ حَتَّى فَعَلَ ذَلِكَ ثَلاَثَ مَرَّاتٍ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

859- Ji Ebû Hureyre (r.), di hedîsa kesê ku baş nimêj nedikir de, hatiye rîwayetkirin ku mirovek hat, nimêj kir û paşê jî hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û silav dayê. Pêxemberê Xwedê (s.) silava wî hilda û jê re got: “Tu vegere û nimêj bike, lewra te nimêj nekir.” Ew kes zivirî, dîsa nimêj kir, paşê hat û silav da Pêxember (s.) ev yeka sê caran tekrar kir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٦٠- وَعَنْهُ، عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا لَقِيَ أَحَدُكُمْ أَخَاهُ، فَلْيُسَلِّمْ عَلَيْهِ، فَإِنْ حَالَتْ بَيْنَهُمَا شَجَرَةٌ، أَوْ جِدَارٌ، أَوْ حَجَرٌ، ثُمَّ لَقِيَهُ، فَلْيُسَلِّمْ عَلَيْهِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود.

860- Dîsa ji wî (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê yek ji we rastî birayê xwe hat bila silavê bide. Heger darek û yan dîwarek û yan jî kevirek kete navbera wan de û paşê rastî wî hat bila dîsa silavê lê bike.” *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ السَّلاَمِ إِذَا دَخَلَ بَيْتَهُ
## MUSTEHEBBÛNA SILAVDAYINÊ DEMA KETINA MALÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿فَإِذَا دَخَلْتُمْ بِيُوتاً فَسَلِّمُوا عَلَى أَنْفُسِكُمْ تَحِيَّةً مِنْ عِنْدِ اللَّهِ مُبَارَكَةً طَيِّبَةً﴾

"Vêca eger hûn çûne hinek malan, bi silava Xwedê ya ku dilveker e silavê bidine xwe."[1]

٨٦١- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (يَا بُنَيَّ، إِذَا دَخَلْتَ عَلَى أَهْلِكَ، فَسَلِّمْ، يَكُنْ بَرَكَةً عَلَيْكَ، وَعَلَى أَهْلِ بَيْتِكَ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

861- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Kurê min! Wextê tu çûyî mala xwe silavê bide, tu û ehlê mala te hûnê bi bereket bibin." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

## بَابُ السَّلاَمِ عَلَى الصِّبْيَانِ
## SILAVA LI PIÇÛKA

٨٦٢- عَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّهُ مَرَّ عَلَى صِبْيَانٍ، فَسَلَّمَ عَلَيْهِمْ، وقَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَفْعَلُهُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

862- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku rojekê ew di ber piçûkan re derbas bû, silav li wan kir û got: Pêxemberê Xwedê (s.) jî wiha dikir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ سَلاَمِ الرَّجُلِ عَلَى زَوْجَتِهِ وَالْمَرْأَةِ مِنْ مَحَارِمِهِ
## SILAVA MÊR LI JINA XWE

٨٦٣- عَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ ﷺ قَالَ: كَانَتْ فِينَا إِمْرَأَةٌ -وَفِي رِوَايَةٍ: كَانَتْ لَنَا عَجُوزٌ- تَأْخُذُ مِنْ أُصُولِ السِّلْقِ فَتَطْرَحُهُ فِي الْقِدْرِ، وَتُكَرْكِرُ حَبَّاتٍ مِنْ شَعِيرٍ، فَإِذَا صَلَّيْنَا الْجُمُعَةَ، وَانْصَرَفْنَا، نُسَلِّمُ عَلَيْهَا، فَتُقَدِّمُهُ إِلَيْنَا. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

863- Ji Sehlê kurê Se'd (r.), got: Di nav me de jinek hebû. –Di rîwayetekê de: Li bal me jineke pîr hebû.– Silk ji rê radikir, diavête sîtilê û libê ceh jî dihêra. Wextê me nimêja înê dikir û em dizivirîn me silav lê dikir, ewê jî ew xwarin dianî pêşiya me. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٨٦٤- وَعَنْ أُمِّ هَانِئٍ فَاخِتَةَ بِنْتِ أَبِي طَالِبٍ ﷺ قَالَتْ: أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَوْمَ الْفَتْحِ وَهُوَ

1 Nûr, 24/61.

يَغْتَسِلُ، وَفَاطِمَةُ تَسْتُرُهُ بِثَوْبٍ، فَسَلَّمْتُ،..... وذكَرَتِ الحديث. رَوَاهُ مُسْلِم.

864- Ji Ummu Hanî Faxîte ya keça Ebû Talib (r.), got: Ez di wextê fetha Mekkeyê de hatim cem Pêxemberê Xwedê (s.), ewî jî serê xwe dişûşt û Fatimeyê jî ew (s.) dinixûmand. Min silav kir. Wê temamê hedîsê zikir kir. *Muslim rîwayet kiriye.*

٨٦٥- وَعَنْ أَسْمَاءَ بِنْتِ يَزِيدَ ﷺ قَالَتْ: مَرَّ عَلَيْنَا النَّبِيُّ ﷺ فِي نِسْوَةٍ فَسَلَّمَ عَلَيْنَا.
رَوَاهُ أَبُو دَاوود والتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ وَهَذَا لَفْظُ أَبِي دَاوود.

وَلَفْظُ التِّرْمِذِي: (أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ مرَّ فِي الْمَسْجِدِ يَوْماً وَعصْبَة مِنَ النِّسَاءِ قعُود فَأَلْوَى بِيَدِهِ بِالتَّسْلِيم).

865- Ji Esmaya keça Yezîd (r.), got: Pêxember (s.) di ber me re derbas bû ku em di nav komeke jinan de bûn, silav li me kir. *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

Eva lefzê Ebû Dawûd e. Lefzê Tirmizî jî eva ye: Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) rojekê di ber mizgeftê re derbas bû û komeke jinan jî rûniştibûn. Pêxemberê Xwedê (s.) bi destê xwe silav da wan.

## بَابُ تَحْرِيمِ إِبْتِدَاءِ الْكَافِرِ بِالسَّلَامِ وَكَيْفِيَّةِ الرَّدِ عَلَيْهِمْ
## SILAV DANA MUŞRÎKAN Û HILDANA SILAVA WAN

٨٦٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا تَبْدَؤُوا الْيَهُودَ وَلَا النَّصَارَى بِالسَّلَامِ، فَإِذَا لَقِيتُمْ أَحَدَهُم فِي طَرِيقٍ فَاضطرُّوهُ إِلَى أَضْيَقِهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

866- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wiha gotiye: “Hûn wextê rastî Cihû û Filehan hatin pêşiya wan silavê nedin. Wextê hûn di rêyekê de rastî yekî ji wan hatin, rê li wan teng bikin.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٨٦٧- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا سَلَّمَ عَلَيْكُمْ أَهْلُ الكِتَابِ فَقُولُوا: وَعَلَيْكُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

867- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Wextê ehlê kitêba silav da we hûn jî bibêjin: We ‘Eleykum (li ser we jî). *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٦٨- وَعَنْ أُسَامَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ مَرَّ عَلَى مَجْلِسٍ فِيهِ أَخْلَاطٌ مِنَ الْمُسْلِمِينَ وَالْمُشْرِكِينَ -عَبَدَةِ الأَوْثَانِ واليَهُودِ- فَسَلَّمَ عَلَيْهِم النَّبِيُّ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

868- Ji Usame (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) rojekê di ber civatekê re derbas bû ku tê de misilman, muşrik –pûtperest û Cihû– tevlihev hebûn, û Pêxember (s.) silav li wan kir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ السَّلَامِ إِذَا قَامَ مِنَ الْمَجْلِسِ
## MUSTEHEBBÛNA SILAVDAYINÊ WEXTÊ RABÛNA JI CIVATÊ

٨٦٩- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا انْتَهَى أَحَدُكُمْ إِلَى الْمَجْلِسِ فَلْيُسَلِّمْ، فَإِذَا أَرَادَ أَنْ يَقُومَ فَلْيُسَلِّمْ، فَلَيْسَتِ الأُولَى بِأَحَقّ مِنَ الآخِرَةِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود والتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

869- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê yek ji we çû civatekê bila silavê bide. Û wextê bivê ku ji civatê rabe bila dîsa silavê bide. Silava pêşîn çêtir nîne ji silava dawiyê.” *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ الإِسْتِئْذَانِ وَآدَابِهِ
## ADABÊ DESTÛRXWESTINÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا لَا تَدْخُلُوا بُيُوتاً غَيْرَ بُيُوتِكُمْ حَتَّى تَسْتَأْنِسُوا وَتُسَلِّمُوا عَلَى أَهْلِهَا﴾

“Gelî ewên bawerî anîne! Hûn neçine xaniyên ji xeynê xaniyê xwe heta ku hûn destûrê wernegirin û silav li xwediyê wan nekin (ku bêjin es-selamû ‘eleykum. Bême jor? Carekê û yan jî sê caran).”[1]

﴿وَإِذَا بَلَغَ الأَطْفَالُ مِنْكُمُ الْحُلُمَ فَلْيَسْتَأْذِنُوا كَمَا اسْتَأْذَنَ الَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْ﴾

“Gava ku piçûkê we balix bûn, bila ew jî destûrê bixwazin (berî bêne cem we) her wekî ewê beriya wan destûrê dixwazin.”[2]

1 Nûr, 24/27.
2 Nûr, 24/59.

٨٧٠- وَعَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (الإِسْتِئْذَانُ ثَلَاثٌ: فَإِنْ أُذِنَ لَكَ وَإِلَّا فَارْجِعْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

870- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Destûrxwestin sê car e. Heger xwediyê malê destûr da te bila, lê eger destûr neda tu vegere." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٧١- وَعَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّمَا جُعِلَ الإِسْتِئْذَانُ مِنْ أَجْلِ الْبَصَرِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

871- Ji Sehlê kurê Se'd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman ji bo çav (yanî ji bo kêmasî û eybê mala neyêne dîtin) destûrxwestin meşrû' bûye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٧٢- وَعَنْ رِبْعِيِّ بْنِ حِرَاشٍ قَالَ: حَدَّثَنَا رَجُلٌ مِنْ بَنِي عَامِرٍ أَنَّهُ اسْتَأْذَنَ عَلَى النَّبِيِّ ﷺ وَهُوَ فِي بَيْتٍ، فَقَالَ: أَأَلِجُ؟ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لِخَادِمِهِ: (اخْرُج إِلَى هَذَا فَعَلِّمْهُ الإِسْتِئْذَانَ، فَقُلْ لَهُ: قُلْ: السَّلَامُ عَلَيكُم، أَأَدْخُلُ؟) فَسَمِعَهُ الرَّجُلُ فَقَالَ: السَّلَامُ عَلَيْكُم أَأَدْخُلُ؟ فَأَذِنَ لَهُ النَّبِيُّ ﷺ فَدَخَلَ. رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيح.

872- Ji Rib'iyê kurê Hîraş (r.), got: Mirovekî ji êla Benî 'Amira ji me re got ku ewî ji Pêxember (s.), ku ew jî (s.) di malekê de bûye, destûr xwest û got: Ez werime hundir? Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) ji xulamê xwe re got: "Tu derkeve, destûrxwestinê hînî vî bike û tu ji wî re bêje: Bêje: Es-selamu 'eleykum, ez werime hundir?" Ewî mirovî eva bihîst û got: Es-selamu 'eleykum, ez werime hundir? Û li ser vê gotinê Pêxember (s.) destûra wî da û ew kete hundir. *Ebû Dawûd bi senedeke baş rîwayet kiriye.*

٨٧٣- عَنْ كِلْدَةَ بْنِ الْحَنْبَلِ ﷺ قَالَ: أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ، فَدَخَلْتُ عَلَيْهِ وَلَمْ أُسَلِّمْ، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (ارْجِعْ فَقُلْ السَّلَامُ عَلَيْكُمْ أَأَدْخُلُ؟). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

873- Ji Kildeyê kurê Henbel (r.), got: Ez hatim bal Pêxember (s.) û bê silav ez çûme cem. Vêca Pêxember (s.) got: "Tu bizivire here û bêje: Es-selamu 'eleykum, ez werime hundir?" *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ بَيَانِ إِذَا قِيلَ لِلمُسْتَأْذِنْ مَنْ أَنْتَ؟ أَنْ يَقُول: أَنَا فُلَان

## SUNNETBÛNA DEMA JI KESÊ DESTÛRÊ DIXWAZE HATE PIRSÎN: TU KÎ YÎ? NAVÊ XWE BÊJE

٨٧٤- عَنْ أَنَسٍ ﷺ فِي حَدِيثِهِ الْمَشْهُورِ فِي الإِسْرَاءِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (ثُمَّ صَعِدَ بِي جِبْرِيلُ إِلَى السَّمَاءِ الدُّنْيَا فَاسْتَفْتَحَ، فَقِيلَ: مَنْ هَذَا؟ قَالَ: جِبْرِيلُ، قِيلَ: وَمَنْ مَعَكَ؟ قَالَ مُحَمَّدٌ، ثُمَّ صَعِدَ إِلَى السَّمَاءِ الثَّانِيَةِ والثَّالِثَةِ وَالرَّابِعَةِ وَسائِرِهِنَّ، وَيقَالُ فِي بَابِ كُلِّ سَمَاءٍ؟ مَنْ هَذَا؟ فَيَقُولُ: جِبْرِيلُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

874- Ji Enes (r.), di hedîsa wî ya navdar di behsa Îsrayê de, got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Paşê Cebraîl ez birime asîmanê dunyayê, daxwaza vekirinê kir. Vêca hate gotin: Ew kî ye? Cibrîl got: Cebraîl. Dîsa hate gotin: Ew kî ye bi te re? Cibrîl got: Muhemmed e. Paşê derkete asîmanê duyem, sêyem, çarem û yê din jî û di derê her asîman de dihate gotin: Ew kî ye? Cibrîl jî digot: Cebraîl." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٧٥- وَعَنْ أَبِي ذَرٍ ﷺ قَالَ: خَرَجْتُ لَيْلَةً مِنَ اللَّيَالِي، فَإِذَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَمْشِي وَحْدَهُ، فَجَعَلْتُ أَمْشِي فِي ظِلِّ الْقَمَرِ، فَالْتَفَتَ فَرَآنِي. فَقَالَ: (مَنْ هَذَا؟) فَقُلْتُ: أَبُو ذَرٍّ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

875- Ji Ebû Zerr (r.), got: Ez şevekê derketim, min lê nihêrî Pêxemberê Xwedê (s.) bi tenê dimeşe. Ez jî di siha heyvê de meşiyam. Pêxemberê Xwedê (s.) pişt xwe ve nihêrî, ez dîtim û got: "Ew kî ye?" Min got: Ebû Zerr. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٧٦- وَعَنْ أُمِّ هَانِئٍ ﷺ قَالَتْ: أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ وَهُوَ يَغْتَسِلُ وَفَاطِمَةُ تَسْتُرُهُ، فَقَالَ: (مَنْ هَذِهِ؟) فَقُلْتُ: أَنَا أُمُّ هَانِئٍ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

876- Ji Ummu Hanî (r.), got: Ez hatim cem Pêxember (s.), ewî serê xwe dişûşt û Fatimeyê jî ew (s.) dinixûmand. Ewî (s.) got: "Ew kî ye?" Min got: Ez Ummu Hanî me. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٨٧٧- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ فَدَقَقْتُ البَابَ، فَقَالَ: (مَنْ هَذَا؟) فَقُلْتُ: أَنَا،

فَقَالَ: (أَنَا أَنَا؟) كَأَنَّهُ كَرِهَهَا. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

877- Ji Cabir (r.), got: Ez hatim cem Pêxember (s.), min li derî da. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Ew kî ye?” Min got: Ez im. Vêca ewî (s.) got: “Ez im ez im.” Her wekî eva li wî (s.) xweş nehat. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ اسْتِحْبَابِ تَشْمِيتِ الْعَاطِسِ إِذَا حَمِدَ الله تَعَالَى
## MUSTEHEBBÛNA TEŞMÎTA BÊNIJKERÎ

٨٧٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ اللَّهَ يُحِبُّ العُطَاسَ، وَيَكْرَهُ التَّثَاؤُبَ، فإِذَا عَطَسَ أَحَدُكُمْ وَحَمِدَ الله تَعَالَى كَانَ حَقّاً عَلَى كُلِّ مُسْلِمٍ سَمِعَهُ أَنْ يَقُولَ لَهُ: يَرْحَمُكَ الله، وَأَمَّا التَّثَاؤُبَ فَإِنَّمَا هُوَ مِنَ الشَّيْطَانِ، فإِذَا تَثَاءبَ أَحَدُكُمْ فَلْيَرُدَّهُ مَا اسْتَطَاعَ، فَإِنَّ أَحَدَكُمْ إِذَا تَثَاءَبَ ضَحِكَ مِنْهُ الشَّيْطَانُ). رَوَاهُ البُخَارِي.

878- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Bêguman Xweda te‘ala ji bênijker hez dike û ji bawîşker jî dikerihe. Vêca wextê yek ji we bênijî û hemdê Xwedê te‘ala kir, heq e li ser hemû misilmanê ku dibihîze bêje: Yerhemûkellah (Xwedê rehmê li te bike). Lê bawîşker, ew bes ji şeytan e. Wextê yek ji we bawîşk hatê, bi qasî bikaribe bila nehêlê bawîşk be. Lewra yek ji we wextê bawîşkî dibe, şeytan pê dikene.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

٨٧٩- وَعَنْهُ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِذَا عَطَسَ أَحَدُكُمْ فَلْيَقُلْ: الْحَمْدُ لِلهِ، وَلْيَقُلْ لَهُ أَخُوهُ أَوْ صَاحِبُهُ: يَرْحَمُكَ الله، فَإِذَا قَالَ لَهُ: يَرْحَمُكَ الله، فَلْيَقُلْ: يَهْدِيكُمُ اللَّهُ وَيُصْلِحُ بَالَكُمْ). رَوَاهُ البُخَارِي.

879- Dîsa ji wî (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: “Wextê yek ji we bênijî bila bêje: Elhemdu lîllah. (Hemd ji Xwedê re be.) Û birayê wî û yan jî hevalê wî bila jê re bêje: Yerhemûkellah. (Xwedê rehmê li te bike.) Û kesê ku bênijî bû bila dîsa bêje: Yehdîkumullahu we yuslihû balekum. (Xwedê we hîdayet bike û dilê we pak bike.)” *Buxarî rîwayet kiriye.*

٨٨٠- وَعَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (إِذَا عَطَسَ أَحَدُكُمْ

فَحمِدَ اللَّهَ فَشَمِّتُوهُ، فَإِنْ لَمْ يَحْمَدِ الله فَلا تُشَمِّتُوهُ) رَوَاهُ مُسْلِم.

880- Ji Ebû Mûsa (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: "Wextê yek ji we bênijî û hemdê Xwedê kir, hûn teşmîta wî bikin. Wextê hemdê Xwedê nekir hûn jî teşmîta wî nekin." *Muslim riwayet kiriye.*

٨٨١- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: عَطَسَ رَجُلَانِ عِنْدَ النَّبِيِّ ﷺ فَشَمَّتَ أَحَدَهُمَا وَلَمْ يُشَمِّتِ الآخر، فَقَالَ الَّذِي لَمْ يُشَمِّتْهُ: عَطَسَ فُلَانٌ فَشَمَّتَّهُ، وَعَطَسْتُ فَلَمْ تُشَمِّتْنِي؟ فَقَالَ: (هَذَا حَمِدَ اللَّهَ، وَإِنَّكَ لَمْ تَحْمدِ الله). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

881- Ji Enes (r.), got: Du mirov li cem Pêxember (s.) bênijîn, vêca Pêxemberê Xwedê (s.) teşmîta yekî kir ya yekî nekir. Îcar ew mirovê ku Pêxember (s.) teşmîta wî nekiribû got: Filan kes bênijî te teşmîta wî kir, ez jî bênijîm lê te teşmîta min nekir. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Ewî hemdê Xwedê kir, lê te hemdê Xwedê nekir." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٨٨٢- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: (كَانَ رَسُولُ الله ﷺ إِذَا عَطَسَ وَضَعَ يَدَهُ أَوْ ثَوْبَهُ عَلَى فِيهِ، وَخَفَضَ - أَوْ غَضَّ - بِهَا صَوْتَهُ. رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

882- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) dibênijî destê xwe û yan jî kincê xwe datanî ser devê xwe û bi vî awayî dengê xwe kêm dikir û yan jî dimiçand. *Ebû Dawûd û Tirmizî riwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs sehîh e.*

٨٨٣- وَعَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ قَالَ: كَانَ الْيَهُودُ يَتَعَاطَسُونَ عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ يَرْجُونَ أَنْ يَقُولَ لهمْ: يَرْحَمُكُمُ اللَّهُ، فيَقُولُ: (يَهْدِيكمُ الله وَيُصْلِحُ بَالَكُمْ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

883- Ji Ebû Mûsa (r.), got: Cihû li cem Pêxemberê Xwedê (s.) dibênijîn, hêvîdar bûn ku Pêxember (s.) ji wan re bêje: Yerhemûkellah. Bes Pêxemberê Xwedê (s.) digot: "Yehdîkumullah we yuslihû balekum." *Ebû Dawûd û tirmizî riwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

٨٨٤- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا تَثَاءَبَ أَحَدُكُمْ

  

فَلْيُمْسِكْ بِيَدِهِ عَلَى فِيهِ، فَإِنَّ الشَّيْطَانَ يَدْخُلُ فِيهِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

884- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Wextê yek ji we bawîşk hatê bila bi destê xwe devê xwe bigire. Lewra şeytan dikevê." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ الْمُصَافَحَةِ عِنْدَ اللِّقَاءِ وَبَشَاشَةِ الْوَجْهِ

## MUSTEHEBBÛNA DESTTOQEKIRINÊ Û DEVKENIYÊ WEXTÊ RASTÎ HEVHATINÊ Û DESTMAÇKIRINA MERIVÊN SALIH

٨٨٥- عَنْ أَبِي الْخَطَّابِ قَتَادَةَ قَالَ: قُلْتُ لِأَنَسٍ: أَكَانَتِ الْمُصَافَحَةُ فِي أَصْحَابِ رَسُولِ اللهِ ﷺ؟ قَالَ: نَعَمْ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

885- Ji Ebû Xettab Qetade (r.), got: Min ji Enes re got: Di nav eshabê Pêxemberê Xwedê (s.) de musafehe/desttoqekirin hebû? Got: Belê. *Buxarî rîwayet kiriye.*

٨٨٦- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: لَمَّا جَاءَ أَهْلُ الْيَمَنِ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (قَدْ جَاءَكُمْ أَهْلُ الْيَمَنِ وَهُمْ أَوَّلُ مَنْ جَاءَ بِالْمُصَافَحَةِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

886- Ji Enes (r.), got: Wextê ehlê Yemenê hatin, Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ehlê Yemenê hatine bal we û yê pêşiyê desttoqekirin derxistine ew in." *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

٨٨٧- وَعَنِ الْبَرَاءِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا مِنْ مُسْلِمَيْنِ يَلْتَقِيَانِ فَيَتَصَافَحَانِ إِلَّا غُفِرَ لَهُمَا قَبْلَ أَنْ يَفْتَرِقَا). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد.

887- Ji Bera (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Wextê du misilman rastî hevdu hatin û bi dest hev girtin, miheqeq beriya ku ji hevdu veqetin gunehê wan tê bexşandin." *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

٨٨٨- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَجُلٌ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، الرَّجُلُ مِنَّا يَلْقَى أَخَاهُ أَوْ صَدِيقَهُ، أَيَنْحَنِي لَهُ؟ قَالَ: (لَا) قَالَ: أَفَيَلْتَزِمُهُ وَيُقَبِّلُهُ؟ قَالَ: (لَا) قَالَ: فَيَأْخُذُ بِيَدِهِ

وَيُصَافِحُهُ؟ قَالَ: (نَعَمْ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

888- Ji Enes (r.), got: Mirovekî got: Ya Pêxemberê Xwedê! Mirovek ji me wextê rastî bira û yan jî hevalê xwe hat bila xwe jê re bitewîne? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Naxêr." Ewî mirovî got: Nexwa bila wî hemêz bike û wî ramûse? Ewî (s.) got: "Naxêr." Ewî mirovî got: Wî çaxî bila destê wî bigire û desttoqe bike? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Belê." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

٨٨٩- وَعَنْ صَفْوَانَ بْنِ عَسَّالٍ قَالَ: قَالَ يَهُودِيٌّ لِصَاحِبِهِ: اذْهَبْ بِنَا إِلَى هَذَا النَّبِيِّ فَأَتَيَا رَسُولَ الله ﷺ فَسَأَلَاهُ عَنْ تِسْعِ آيَاتٍ بَيِّنَاتٍ، فَذَكَرَ الْحَدِيثَ إِلَى قَوْلِهِ: فَقَبَّلَا يَدَهُ وَرِجْلَهُ، وَقَالَا: نَشْهَدُ أَنَّكَ نَبِيٌّ. رَوَاهُ التِّرْمِذِي وَغَيْرُه بِأَسَانِيدَ صَحِيحَةٍ.

889- Ji Sefwanê kurê 'Essal (r.), got: Cihûyekî ji hevalê xwe re got: Tu were em herine bal vî Pêxemberî. Vêca her du çûne cem Pêxemberê Xwedê (s.), pirsa neh delîlên eşkere kirin. Hedîs heta vê derê zikir kir: Vêca wan her du Cihûyan dest û piyê Pêxemberê Xwedê (s.) maç kirin û gotin em şehde didin ku tu pêxemberî. *Tirmizî û xeynê wî bi senedeke sehîh rîwayet kirine.*

٨٩٠- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قِصَّةً قَالَ فِيهَا: فَدَنَوْنَا مِنَ النَّبِيِّ ﷺ فَقَبَّلْنَا يَدَهُ. رَوَاهُ أَبُو دَاوُد.

890- Ji Îbnu 'Umer (r.) qissetek hatiye rîwayetkirin, ewî di wê qissetê de got: Em nêzîkî Pêxember (s.) bûn û me destê wî maç kir. *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

٨٩١- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: قَدِمَ زَيْدُ بْنُ حَارِثَةَ الْمَدِينَةَ وَرَسُولُ اللَّهِ ﷺ فِي بَيْتِي، فَأَتَاهُ فَقَرَعَ الْبَابَ، فَقَامَ إِلَيْهِ النَّبِيُّ ﷺ يَجُرُّ ثَوْبَهُ، فَاعْتَنَقَهُ وَقَبَّلَهُ. رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

891- Ji 'Aîşe (r.), got: "Zeydê kurê Haris zivirî hate Medîneyê û Pêxemberê Xwedê (s.) jî di mala min de bû. Zeyd hat, li derî da. Vêca Pêxember (s.) pêş wî ve rabû, kincê xwe bi erdê re kişand, Zeyd girt û maç kir. *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

٨٩٢- وَعَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَحْقِرَنَّ مِنَ الْمَعْرُوفِ شَيْئاً، وَلَوْ أَنْ تَلْقَى أَخَاكَ بِوَجْهٍ طَلْقٍ). رَوَاهُ مُسْلِم.

892- Ji Ebû Zerr (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: Tu ji qenciyê tu tiştekî piçûk nebîne, çendan tu bi rûyekî beşuş jî rastî birayê xwe werî." *Muslim rîwayet kiriye.*

٨٩٣- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَبَّلَ النَّبِيُّ ﷺ الْحَسَنَ بْنَ عَلِيٍّ ﷺ فَقَالَ الأَقْرَعُ بْنِ حَابِسٍ: إِنَّ لِي عَشْرَةَ مِنَ الْوَلَدِ مَا قَبَّلْتُ مِنْهُمْ أَحَداً. فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ لَا يَرْحَمُ لَا يُرْحَمُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

893- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxember (s.) Hesenê kurê 'Elî (r.) maç kir. Eqre'ê kurê Habis got: Deh zarokên min hene min yek maç nekiriye. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Kesê rehmê neke li wî jî rehm nayê kirin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

# كِتَاب عِيَادَة الْمَرِيضِ
# KITÊBA SERLÊDANA NEXWEŞAN

## باب عيادة المريض
## SERLÊDANA NEXWEŞAN

٨٩٤- عَنِ الْبَرَاءِ بْنِ عَازِبٍ قَالَ: أَمَرَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِعِيَادَةِ الْمَرِيضِ، وَاتِّبَاعِ الْجَنَازَةِ، وَتَشْمِيتِ الْعَاطِسِ، وَإِبْرَارِ الْمُقْسِمِ، وَنَصْرِ الْمَظْلُومِ، وَإِجَابَةَ الدَّاعِي، وَإِفْشَاءِ السَّلَامِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

894- Ji Berayê kurê 'Azib (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) emrê me kir bi serlêdana nexweşî, rêxistina cenazeyî, teşmîta bênijkerî, pêkanîna sonda sondxwarî, arîkariya sîtembarî/mezlûmî, îcabeta daweta gazîkirî û yek jî belavkirina silavê. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٨٩٥- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (حَقُّ الْمُسْلِمِ عَلَى الْمُسْلِمِ خَمْسٌ: رَدُّ السَّلَامِ، وَعِيَادَةُ الْمَرِيضِ، وَإِتِّبَاعُ الْجَنَائِزِ، وَإِجَابَةُ الدَّعْوَةِ، وَتَشْمِيتُ الْعَاطِسِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

895- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Heqê misilman li ser misilman pênc in: Hildana silavê, serlêdana nexweşî, rêxistina cenazeyî, îcabeta daweta gazîkirî û teşmîta bênijkerî." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٨٩٦- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ يَقُولُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ: يَا ابْنَ آدَمَ مَرِضْتُ فَلَمْ تَعُدْنِي، قَالَ: يَا رَبِّ كَيْفَ أَعُودُكَ وَأَنْتَ رَبُّ الْعَالَمِينَ؟ قَالَ: أَمَا عَلِمْتَ أَنَّ عَبْدِي فُلاناً مَرِضَ فَلَمْ تَعُدْهُ؟ أَمَا عَلِمْتَ أَنَّكَ لَوْ عُدْتَهُ لَوَجَدْتَنِي عِنْدَهُ؟ يَا ابْنَ آدَمَ اسْتَطْعَمْتُكَ فَلَمْ تُطْعِمْنِي، قَالَ: يَا رَبِّ كَيْفَ أُطْعِمُكَ وَأَنْتَ رَبُّ الْعَالَمِينَ؟ قَالَ: أَمَّا عَلِمْتَ أَنَّهُ اسْتَطْعَمَكَ عَبْدِي فُلانٌ فلَمْ تُطْعِمْهُ، أَمَا عَلِمْتَ أَنَّكَ لَوْ أَطْعَمْتَهُ لَوَجَدْتَ ذَلِكَ عِنْدِي؟ يَا ابْنَ آدَمَ اسْتَسْقَيْتُكَ فَلَمْ تَسْقِنِي، قَالَ: يَا رَبِّ كَيْفَ أَسْقِيكَ وَأَنْتَ رَبُّ الْعَالَمِينَ؟ قَالَ: اسْتَسْقَاكَ عَبْدِي فُلَانٌ فَلَمْ تَسْقِه أَمَا عَلِمْتَ أَنَّكَ لَوْ سَقَيْتَهُ لَوَجَدْتَ ذَلِكَ عِنْدِي) رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

896- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Bêguman Xweda te‘ala di roja qiyametê de dibêje: “Ey însan! Ez nexweş ketim, lê te serî li min neda”. Însan jî dibêje: Rebbê min! Ezê çawa serî bidim te ku tu jî Rebbê alemê yî? Wê Xwedê te‘ala bêje: “Qey te nezanî bendeyê/‘ebdê min filan kes nexweş ket û te jî serî li wî neda? Û te nezanî ku te eger serî li wî bida te yê ez li cem wî bidîtama? Ya Benî Adem! Min ji te xwarin xwest û te xwarin neda min.” Ebd dibêje: Rebbê min! Ezê çawa xwarinê bidime te ku tu jî Rebbê ‘alemê yî? Xwedayê te‘ala got: “Qey te nezanî bendeyê min filan kes xwarin ji te xwest û te jî xwarin neda wî? Û te nezanî ku eger te xwarin bida wî te yê ez lî bal wî bidîtama. Ya Benî Adem! Min ji te vexwarin xwest û te jî vexwarin neda min.” Bende dibêje: Rebbê min! Ezê çawa vexwarinê bidime te ku tu jî Rebbê alemê yî? Xwedê te‘ala jî dibêje: “Filan bendeyê min vexwarin ji te xwest û te nedayê. Qey te nezanî ku te eger vexwarin bida wî te yê ew li cem min bidîta? *Muslim rîwayet kiriye.*

٨٩٧- وَعَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (عُودُوا الْمَرِيضَ، وَأَطْعِمُوا الْجَائِعَ، وَفُكُّوا الْعَانِي). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

897- Ji Ebû Mûsa (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Hûn seriya bidine nexweşan, mirovên birçî têr bikin û koleyan azad bikin.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

٨٩٨- وَعَنْ ثَوْبَانَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ الْمُسْلِمَ إِذَا عَادَ أَخَاهُ الْمُسْلِمَ لَمْ يَزَلْ فِي خُرْفَةِ الْجَنَّةِ حَتَّى يَرْجِعَ) قِيلَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ وَمَا خُرْفَةُ الجَنَّةِ؟ قَالَ: (جَنَاهَا). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

898- Ji Sewban (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Wextê misilman birayê xwe yê misilman ziyaret bike heta vegere ew di nav xurfeyê cennetê de ye. Hate gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Xurfeyê cennetê çi ye? Ewî (s.) got: Berhevkiriyê/fêkiyê wê ye.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٨٩٩- وَعَنْ عَلِيٍّ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (مَا مِنْ مُسْلِم يَعُودُ مُسْلِماً غُدْوَةً إِلَّا صَلَّى عَلَيْهِ سَبْعُونَ أَلْفَ مَلَكٍ حَتَّى يُمْسِي، وَإِنْ عَادَهُ عَشِيَّةً إِلَّا صَلَّى عَلَيْهِ سَبْعُونَ أَلْفَ مَلَكٍ حَتَّى يُصْبِحَ، وَكَانَ لَهُ خَرِيفٌ فِي الجَنَّةِ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

899- Ji ‘Elî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Misilmanek ku here serdana misilmanekî di wextê sibehê de, heftê hezar milyaket ji bo wî dua dikin heta dibe êvar. Heger êvarê misilmanek çû serdana misilmanekî dîsa heftê hezar milyaket ji bo wî dua dikin heta dibe sibeh. Û ji bo wî di cennetê de jî berhevkiriyê fêkiyan heye.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

٩٠٠- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: كَانَ غُلَامٌ يَهُودِيٌّ يَخْدُمُ النَّبِيَّ ﷺ فَمَرِضَ، فَأَتَاهُ النَّبِيُّ ﷺ يَعُودُهُ، فَقَعَدَ عِنْدَ رَأْسِهِ، فَقَالَ لَهُ: (أَسْلِمْ) فَنَظَرَ إِلَى أَبِيهِ وَهُوَ عِنْدَهُ فَقَالَ: أَطِعْ أَبَا الْقَاسِمِ، فَأَسْلَمَ، فَخَرَجَ النَّبِيُّ ﷺ وَهُوَ يَقُولُ: (الحَمْدُ لِلهِ الَّذِي أَنْقَذَهُ مِنَ النَّارِ) رَوَاهُ البُخَارِي.

900- Ji Enes (r.), got: Zarokekî Cihû xulamiya Pêxemberê Xwedê (s.) dikir. Vêca ew nexweş ket. Pêxember (s.) çû serdana wî, li ber serê wî rûnişt û jê re got: “Bibe misilman.” Ewî zarokî li bavê xwe, ku ew jî li bal rûniştibû, nihêrî. Bavê wî got: Tu fermanberiya/îta‘eta Ebul-Qasim (Hz. Muhemmed) bike. Vêca ew zarok misilman bû. Pêxemberê Xwedê (s.) derket û wiha digot: “Hemd ji wî Xwedayî re be ku ew zarok ji êgir rizgar kir.” *Buxarî rîwayet kiriye*

## بَابُ مَا يدعى بِهِ لِلْمَرِيضِ

## TIŞTÊ KU PÊ JI BO NEXWEŞ DUA TÊ KIRIN

٩٠١- عَنْ عَائِشَةَ ﵁ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ إِذَا اشْتَكَى الإِنْسَانُ الشَّيءَ مِنْهُ، أَوْ كَانَتْ بِهِ قَرْحَةٌ أَوْ جُرْحٌ، قَالَ النَّبِيُّ، بِأُصْبُعِهِ هَكَذَا، وَوَضَعَ سُفْيَانُ بْنُ عُيَيْنَةَ الرَّاوِي سَبَّابَتَهُ بِالأَرْضِ ثُمَّ رَفَعَهَا وقَالَ: (بِسْمِ اللَّهِ تُرْبَةُ أَرْضِنَا، بِرِيقَةِ بَعْضِنَا، يُشْفَى بِهِ سَقِيمُنَا، بِإِذْنِ رَبِّنَا). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

901- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.), wextê însanekî ji dereka xwe gazinda êşê kiriba, yan pizrikek, yan jî birînek li wî peyda bibûya, Pêxember (s.) tiliya xwe bi vî awayî datanî –rawî Sufyanê kurê 'Uyeyne (r.) tiliya xwe ya şehdê danî ser erdê û paşê rakir– û wiha got: "Bi navê Xwedê. Ev xweliya erdê me ye, bi tuka hinek ji me tevlîhev bûye û bi îzna Rebbê me nexweşê me yê jê şîfa bibîne." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩٠٢- وَعَنْهَا أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يَعُودُ بَعْضَ أَهْلِهِ يَمْسَحُ بِيَدِهِ الْيُمْنَى وَيَقُولُ: (اللَّهُمَّ رَبَّ النَّاسِ أَذْهِبِ الْبَأسَ، واشْفِ أَنْتَ الشَّافِي لَا شِفَاءَ إِلَا شِفَاؤُكَ، شِفَاءً لَا يُغادِرُ سَقَماً). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

902- Dîsa ji wê (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) serdana hinek ji ehlê mala xwe dikir, bi destê xwe yê rastê ew mesih dikir û wiha digot: "Xweda! Tu Rebbê însana yî. Tu vê nexweşiyê tune bikî, tu şîfa bidî; her tu yî şîfaker, ji xeynê şîfa te tu şîfa tune, şîfake wisa ku tu nexweşiyê nehêle." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩٠٣- وَعَنْ أَنَسٍ ﵁ أَنَّهُ قَالَ لِثَابِتٍ رَحِمَهُ اللَّهُ: أَلَا أَرْقِيكَ بِرُقْيَةِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ؟ قَالَ: بَلَى، قَالَ: اللَّهُمَّ رَبَّ النَّاسِ، مُذْهِبَ الْبَأْسِ، اشْفِ أَنْتَ الشَّافِي، لَا شَافِيَ إِلَّا أَنْتَ، شِفَاءً لَا يُغادِرُ سَقَماً. رَوَاهُ البُخَارِي.

903- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Sabit (r.) re wiha gotiye: Ez te ruqye bikim bi ruqya Pêxemberê Xwedê (s.). Sabit got: Belê. Enes got: "Xweda! Tu Rebbê însana yî, nexweşiyê tune dikî. Tu şîfa bidî; her tu yî şîfaker, ji xeynê te tu şîfaker tunene, şîfake wisa ku tu nexweşiyê nehêle." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٩٠٤- وَعَنْ سَعْدِ بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ ﷺ قَالَ: عَادَنِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: (اللّهُمَّ اشْفِ سَعْداً، اللّهُمَّ اشْفِ سَعْداً، اللّهُمَّ اشْفِ سَعْداً). رَوَاهُ مُسْلِم.

904- Ji Se'dê kurê Ebû Weqqas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) hate serdana min û ev dua xwend: Xwedayo! Tu şîfa bidî Se'd. Xwedayo! Tu şîfa bidî Se'd. Xwedayo! Tu şîfa bidî Se'd." *Muslim riwayet kiriye.*

٩٠٥- وَعَنْ أَبِي عَبْدِ اللَّهِ عُثْمَانَ بْنِ أَبِي الْعَاصِ ﷺ أَنَّهُ شَكَا إِلَى رَسُولِ الله ﷺ وَجَعاً يَجِدُهُ فِي جَسَدِهِ، فَقَالَ لَهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (ضَعْ يَدَكَ عَلَى الَّذِي تَأَلَّمَ مِنْ جَسَدِكَ وَقلْ: بِسْمِ اللَّهِ -ثَلاثاً- وَقُلْ سَبْع مَرَّاتٍ: أَعُوذُ بِعِزَّةِ اللَّهِ وَقُدْرَتِهِ مِنْ شَرِّ مَا أَجِدُ وَأُحَاذِرُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

905- Ji Ebû 'Ebdullah Osmanê kurê Ebul-'As (r.) hatiye rîwayetkirin, ewî gazinda êşeke ku di bedena wî de derketiye li Pêxemberê Xwedê (s.) kir. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) jê re got: Tu destê xwe deyne ser ciyê nexweşiya ji bedena xwe û sê caran bêje: Bismillah û heft caran jî bêje: E'ûzu bî 'îzzetîllahî we qudretîhî mîn şerrî ma ecîdû we uhazirû (Ez bi 'îzzet û qudreta Xwedê xwe diparêzim ji wê nexweşiya ku ez pê dihesim û jê ditirsim." *Muslim riwayet kiriye.*

٩٠٦- وَعَنِ اِبْنِ عَبَّاسٍ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَنْ عَادَ مَرِيضاً لَمْ يَحْضُرْهُ أَجَلُهُ، فَقَالَ عِنْدَهُ سَبْعَ مَرَّاتٍ: أَسْأَلُ اللَّهُ الْعَظِيمَ رَبَّ الْعَرْشِ الْعَظِيمِ أَنْ يَشْفِيكَ: إِلَّا عَافَاهُ اللَّهُ مِنْ ذَلِكَ الْمَرَضِ). رَوَاهُ أَبو دَاوود وَالتِّرمِذِي.

906- Ji kurê 'Ebbas (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Kesê serdana nexweşekî ku ecelê wî nehatiye bike û li cem wî heft caran bêje: Ez ji Xwedayê mezin ku Rebbê erşê mezin e dixwazim ku şîfayê bide te, miheqeq Xwedê dê ewî nexweşî ji wê nexweşiyê xelas bike. *Ebû Dawûd û Tirmizî riwayet kiriye.*

٩٠٧- وَعَنْهُ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ دَخَلَ عَلَى أَعْرَابِيٍّ يَعُودُهُ، وكَانَ إِذَا دَخَلَ عَلَى مَنْ يَعُودُهُ قَالَ: (لَا بَأْسَ، طَهُورٌ إِنْ شَاءَ اللَّهُ). رَوَاهُ البُخَارِي.

907- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) çû serdana mirovekî bedewî û wextê Pêxemberê Xwedê (s.) biçûya serdana nexweşekî

digot: "Çi nabe, ev nexweşî paqij e înşaellah." Buxarî rîwayet kiriye.

٩٠٨- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ أَنَّ جِبْرِيلَ أَتَى النَّبِيَّ ﷺ فَقَالَ: يَا مُحَمَّدُ اشْتَكَيْتَ؟ قَالَ: (نَعَمْ) قَالَ: بِسْمِ اللَّهِ أَرْقِيكَ، مِنْ كُلِّ شَيْءٍ يُؤْذِيكَ، مِنْ شَرِّ كُلِّ نَفْسٍ أَوْ عَيْنِ حَاسِدٍ، الله يَشْفِيكَ، بِسْمِ اللَّهِ أَرْقِيكَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

908- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Cebraîl (s.) hate bal Pêxember (s.) û got: Ya Muhemmed, tu nexweşî? Pêxemberê Xwedê (s.) got: Belê. Cebraîl got: Bi navê Xwedê ezê ruqye bikim ji te re ji hemû tiştê ku te diêşîne û ji xerabiya hemû nefs û yan jî çavên dexes. Xwedê şîfa bide te. Bi navê Xwedê ez ruqya te dikim. Muslim rîwayet kiriye.

٩٠٩- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ وَأَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّهُمَا شَهِدَا عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: (مَنْ قَالَ: لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ وَاللهُ أَكْبَرُ، صَدَّقَهُ رَبُّهُ، فَقَالَ: لَا إِلَهَ إِلَّا أَنَا وَأَنَا أَكْبَرُ، وَإِذَا قَالَ: لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَحْدَهُ لَا شَرِيكَ لَهُ، قَالَ: يَقُولُ: لَا إِلَهَ إِلَّا أَنَا وَحْدِي لَا شَرِيكَ لِي، وَإِذَا قَالَ: لَا إِلَهَ إِلَّا الله لَهُ الْمُلْكُ وَلَهُ الحَمْدُ قَالَ: لَا إِلهَ إِلَّا أَنَا لِيَ الْمُلْكُ وَلِيَ الحَمْدُ، وإِذَا قَالَ: لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَلَا حَوْلَ وَلَا قُوَّةَ إِلَّا بِاللَّهِ، قَالَ: لَا إِلهَ إِلَّا أَنَا، وَلَا حَوْلَ وَلَا قُوَّةَ إِلَّا بِي، وَكَانَ يَقُولُ: مَنْ قَالَهَا فِي مَرَضِهِ ثُمَّ مَاتَ لَمْ تَطْعَمْهُ النَّارُ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

909- Ji Ebû Se'îdê Xudrî û ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku ew her du li bal Pêxemberê Xwedê (s.) hazir bûne ku ewî (s.) gotiye: Kesê bêje: *La îlahe îllellah wellahu ekber* (ji xeynê Xwedê tu îlah tune û Xwedê mezintir e). Rebbê wî jî ewî tesdîq dike/dipejirîne û dibêje: Ji xeynê min tu îlah tune û ez mezintir im. Wextê ew bêje: La îlahe îllellah wehdehu la şerîke lehu (ji xeynê Xwedê tu îlah tune, ew yek e û hevbeşê wî tune). Xwedê jî dibêje: Ji xeynê min tu îlah tune, ez yek im û hevbeşê min jî tune. Wextê ew bêje: La îlahe îllellahu lehul mulku we lehul hemdu (ji xeynê Xwedê tu îlah tune, mulk û hemd bes ji wî re ne). Xwedê jî dibêje: Ji xeynê min tu îlah tune, mulk û hemd jî bes ji bo min in. Wextê ew dibêje: La îlaha îllellahu wela hewle wela quwete îlla bîllah (ji xeynê Xwedê tu îlah tune, qudret û quwet her bi wî ye). Xwedê jî dibêje: Ji xeynê min tu îlah

tune, qudret û quwet jî her bi min e." Pêxemberê Xwedê (s.) digot. "Kesê vêya di nexweşiya xwe de bêje û paşê bimre agir tevî wî nabe." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ سُؤالِ أَهْلِ الْمَرِيضِ عَنْ حَالِهِ

## MUSTEHEBBÛNA PIRSA REWŞA NEXWEŞÊ JI EHLÊ WÎ

٩١٠- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ أَنَّ عَلِيّ بْنِ أَبِي طَالِبٍ ﷺ خَرَجَ مِنْ عِنْدِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي وَجَعِهِ الَّذِي تُوُفِّيَ فِيهِ، فَقَالَ النَّاسُ: يَا أَبَا الْحَسَنِ، كَيْفَ أَصْبَحَ رَسُولُ الله ﷺ؟ قَالَ: أَصْبَحَ بِحَمْدِ اللَّهِ بَارِئاً. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

910- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku 'Elî yê kurê Ebû Talib ji cem Pêxemberê Xwedê (s.), ku ew (s.) di wê nexweşiya xwe ya pê wefat kir de bû, derket. Vêca xelkê gotin: Ya Ebul-Hesen, rewşa Pêxemberê Xwedê (s.) çawa ye? Ewî (r.) got: Hemd be, ji nexweşiya xwe baş bûye. *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ مَاذَا يَقُولُ مَنْ أَيِسَ مِنْ حَيَاتِهِ

## KESÊ JI JÎNA XWE BÊHÊVÎ BE ÇI DIBÊJE

٩١١- عَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ وَهُوَ مُسْتَنِدٌ إِلَيَّ يَقُولُ: (اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي وَارْحَمْنِي، وَأَلْحِقْنِي بِالرَّفِيقِ الأَعْلَى). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

911- Ji 'Aîşe (r.), got: Min ji Pêxember (s.) bihîst, ku ewî (s.) pala xwe dabû min, wiha digot: "Xwedê, tu min bibexşînî, rehmê li min bikî û min bigihînî dostê minê bilind." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٩١٢- وَعَنْهَا قَالَتْ: رَأَيْتُ رَسُولَ الله ﷺ وَهُوَ بِالْمَوْتِ، وعِنْدَهُ قَدَحٌ فِيهِ مَاءٌ، وَهُوَ يُدْخِلُ يَدَهُ فِي الْقَدَحِ، ثُمَّ يَمْسَحُ وَجْهَهُ بِالْمَاءِ، ثُمَّ يَقُولُ: (اللَّهُمَّ أَعِنِّي عَلَى غَمَرَاتِ الْمَوْتِ وَسَكَرَاتِ الْمَوْتِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي.

912- Dîsa ji wê (r.), got: Min Pêxemberê Xwedê (s.) dît ku ew di sekerata mirinê de bû û li cem wî qedehek hebû av tê de bû, destê xwe dixiste qedehê, paşê rûyê xwe bi avê dimişt û paşê jî wiha digot: "Xwedê, tu li hember tengasî û sekerata mirinê arîkariya min bikî." *Tirmizî rîwayet kiriye.*

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ وَصِيَّةِ أَهْلِ الْمَرِيضِ
## MUSTEHEBBÛNA HOSIYA/WESIYETA NEXWEŞÎ

٩١٣- عَنْ عِمْرَانَ بْنِ الْحُصَيْنِ ﷺ أَنَّ إِمْرَأَةً مِنْ جُهَيْنَةَ أَتَتِ النَّبِيَّ ﷺ وَهِيَ حُبْلَى مِنَ الزِّنَا، فَقَالَتْ: يَا رَسُولَ الله، أَصَبْتُ حَدّاً فَأَقِمْهُ عَلَيَّ، فَدَعَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَلِيَّهَا، فَقَالَ: (أَحْسِنْ إِلَيْهَا، فَإِذَا وَضَعَتْ فَأْتِنِي بِهَا) فَفَعَلَ، فَأَمَرَ بِهَا النَّبِيُّ ﷺ فَشُدَّتْ عَلَيْهَا ثِيَابُهَا، ثُمَّ أَمَرَ بِها فَرُجِمَتْ، ثُمَّ صَلَّى عَلَيْهَا. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

913- Ji 'Îmranê kurê Husayn (r.) hatiye rîwayetkirin ku jinek ji êla Cuheyniya hate bal Pêxember (s.), ew jinik ji zinayê hemle bû û got: Ya Pêxemberê Xwedê! Hedd li min dikeve, tu bi cih bîne. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) gazî weliyê wê kir û got: “Tu qenciyê bi vê bike, wextê wê hemla xwe danî tu wê bîne bal min.” Wî jî wisa kir. (Paşê weliyê wê jinikê ew anî.) Pêxember (s.) emir da, vêca kincê wê lê hate şidandin. Piştre dîsa Pêxember (s.) emir da, ew jinik hate recimkirin û paşê Pêxemberê Xwedê (s.) nimêja wê kir. *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ جَوَازِ قَوْلِ الْمَرِيضِ: أَنَا مَرِيضٌ
## CAIZBÛNA GOTINA NEXWEŞÎ KU BÊJE: EZ NEXWEŞIM

٩١٤- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: دَخَلْتُ عَلَى النَّبِيِّ ﷺ وَهُوَ يُوعَكُ، فَمَسَسْتُهُ، فَقُلْتُ: إِنَّكَ لَتُوعَكُ وَعْكاً شَدِيداً، فَقَالَ: (أَجَلْ إِنِّي أُوعَكُ كَمَا يُوعَكُ رَجُلَانِ مِنْكُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

914- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Ez çûme cem Pêxember (s.), ku ew bi tayê ketibû. Min destê xwe danî ser bedena wî û min got: Bêguman te tayeke tund û giran girtiye. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: “Belê, min wekî du mirovan ji we ta girtiye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩١٥- وَعَنْ سَعْدِ بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ ﷺ قَالَ: جَاءَنِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَعُودُنِي مِنْ وَجَعٍ اشْتَدَّ بِي، فَقُلْتُ: بَلَغَ بِي مَا تَرَى، وَأَنَا ذُو مَالٍ، وَلا يَرِثُنِي إِلَّا إِبْنَتِي..... وَذَكَرَ الْحَدِيث. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

915- Ji Se'dê kurê Ebû Weqqas (r.), got: Nexweşiyek giran li min peyda bûbû. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) hate serdana min. Min got: Ya Pêxemberê

  

Xwedê! Vaye tu dibînî nexweşiya min çiqasî li min giran bûye û ez zilamek maldar im ji xeynê keçikeka min jî tu warisê min tune... temamê hedîsê zikir kir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩١٦- وَعَنْ الْقَاسِمِ بْنِ مُحَمَّدٍ قَالَ: قَالَتْ عَائِشَةُ ﵂: وَارَأْسَاهُ فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (بَلْ أنا وَارَأْسَاهُ.....) وَذَكَرَ الْحَدِيثَ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

916- Ji Qasimê kurê Muhemmed (r.), got: Hz. 'Aîşe (r.) got: Ax serê mino! Pêxember (s.) jî got: "Na ax serê mino! Û temamê hedîsê zikir kir. *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَلْقِينِ الْمُحْتَضِرِ لَا إِلَهَ إِلَّا الله

## TELQÎNA LA ÎLAHE ÎLLELLAHÊ JI NEXWEŞÊ GIRAN RE

٩١٧- عَنْ مُعَاذٍ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (مَنْ كَانَ آخِرَ كَلَامِهِ لَا إِلَهَ إِلَّا الله دَخَلَ الْجَنَّةَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالْحَاكِم، وَقَالَ: صَحِيحُ الإِسْنَادِ.

917- Ji Mu'az (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê dûmayîka gotina wî La îlahe îllellah be, ewê here cennetê. *Ebû Dawûd û Hakim rîwayet kirine û Hakim gotiye isnada vê hedîsê sehîh e.*

٩١٨- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَقِّنُوا مَوْتَاكُمْ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

918- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn ji nexweşê xwe yê giran re La îlahe îllellah yê telqîn bikin." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ مَا يَقُولهُ بَعْدَ تَغْمِيضِ الْمَيِّتِ

## TIŞTÊ PIŞTÎ GIRTINA ÇAVÊN MIRÎ TÊ GOTIN

٩١٩- عَنْ أُمِّ سَلَمَةَ ﵂ قَالَتْ: دَخَلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَلَى أَبِي سَلَمَةَ وَقَدْ شَقَّ بَصَرُهُ، فَأَغْمَضَه، ثُمَّ قالَ: (إِنَّ الرُّوحَ إِذَا قُبِضَ تَبِعَهُ الْبَصَرُ، فَضَجَّ نَاسٌ مِنْ أَهْلِهِ) فَقَالَ: (لَا تَدْعُوا عَلَى أَنْفُسِكُمْ إِلَّا بِخَيْرٍ فَإِنَّ الْمَلَائِكَةَ يُؤَمِّنُونَ عَلَى مَا تَقُولُونَ) ثُمَّ قَالَ: (اللَّهُمَّ

اغْفِرْ لِأَبِي سَلَمَةَ، وَارْفَعْ دَرَجَتَهُ فِي المَهْدِيِّينَ، وَاخْلُفْهُ فِي عَقِبِهِ فِي الْغَابِرِينَ، وَاغْفِرْ لَنَا وَلَهُ يَا رَبَّ الْعَالَمِينَ، وَافْسَحْ لَهُ فِي قَبْرِهِ، وَنَوِّرْ لَهُ فِيهِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

919- Ji Ummu Seleme (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) çû cem Ebû Seleme, ku çavê wî vekirî mabûn, çavê wî girt û paşê jî got: “Wextê ruh tê standin çav jî li pey wî dinêre.” Li ser vê gotinê qêrîn û qajîn bi ehlê mala wî ket. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Ji xwe re bes dua xêrê bikin. Lewra milyaket ji duayê we re dibêjin. Amîn.” Û paşê jî wiha got: Xwedayo! Tu Ebû Seleme bibexişînî, dereca wî di nav kesên di rêka rast de ne bilind bikî, kesê di rêya wî de bimeşe tu li pişt wî bihêlî. Rebbê alemê! Tu me û wî bibexşînî, tu gora wî jê re fireh û ronahî bikî.” *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ مَا يُقَالُ عِنْدَ الْمَيِّتِ
## TIŞTÊ LI BAL MIRÎ TÊ GOTIN

٩٢٠- عَنْ أُمِّ سَلَمَةَ ﵂ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا حَضَرْتُمُ الْمَرِيضَ، أَوِ الْمَيِّتَ فَقُولُوا خَيْراً، فَإِنَّ الْمَلَائِكَةَ يُؤَمِّنُونَ عَلَى مَا تَقُولُونَ) قَالَتْ: فَلَمَّا مَاتَ أَبُو سَلَمَةَ، أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، إِنَّ أَبَا سَلَمَةَ قَدْ مَاتَ، قَالَ: (قُولِي: اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي وَلَهُ، وَأَعْقِبْنِي مِنْهُ عُقْبَى حَسَنَةً) فَقُلْتُ، فَأَعْقَبَنِي الله مَنْ هُوَ خَيْرٌ لِي مِنْهُ: مُحَمَّداً ﷺ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

920- Ji Ummu Seleme (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê hûn li bal nexweşekî û yan miriyekî amade bûn, hûn derbarê wî de ya xêr bêjin. Lewra milyaket ji gotina we re dibêjin amîn. Ummu Seleme (r.) dibêje: Wextê Ebû Seleme wefat kir ez çûme cem Pêxember (s.) û min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ebû Seleme wefat kir. Ewî (s.) got: “Tu bêje: Xwedayo! Tu min û wî bibexşînî û yekî ji wî qenctir bidî min.” – Ummu Seleme dibêje: Min ew got. Xwedê jî yekî ji wî qenctir da min ku Muhemmed e. *Muslim rîwayet kiriye.*

٩٢١- وَعَنْهَا قَالَتْ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (مَا مِنْ عَبْدٍ تُصِيبُهُ مُصِيبَةٌ، فَيَقُولُ: إِنَّا لِلهِ وَإِنَّا إِلَيْهِ رَاجِعُونَ، اللَّهُمَّ أْجُرْنِي فِي مُصِيبَتِي، وَاخْلُفْ لِي خَيْراً مِنْهَا إِلَّا أَجَرَهُ اللَّهُ تَعَالَى فِي مُصِيبَتِهِ، وَأَخْلَفَ لَهُ خَيْراً مِنْهَا) قَالَتْ: فَلَمَّا تُوُفِّيَ أَبُو سَلَمَةَ قُلْتُ كَمَا

  

أَمَرَنِي رَسُولُ الله ﷺ فَأَخْلَفَ الله لِي خَيْراً مِنْهُ رَسُولَ الله ﷺ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

921- Dîsa ji wê (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: "Wextê qeda û musîbetek bi ser bendeyekî de were û ew jî wiha bêje: Bêguman em yê Xwedê ne û bes emê dîsa vegerine bal wî ve. Xwedayo! Tu min di derbarê vê musîbetê de xwedanxêr bikî, tu piştî vê qedayê xêrtirê wê bidî min. Dê Xwedê te'ala, ewî di wê qedayê de xwedanxêr bike û dê li pey wê qedayê xêrtirê wê bîne. Ummu Seleme dibêje: Wextê Ebû Seleme wefat kir çawa Pêxemberê Xwedê emrî min kiribû min jî wisa got û Xwedê jî xêrtirê wî, ku Pêxemberê Xwedê ye, da min. *Muslim rîwayet kiriye.*

٩٢٢- وَعَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا مَاتَ وَلَدُ الْعَبْدِ قَالَ اللَّهُ لِمَلَائِكَتِهِ: قَبَضْتُمْ وَلَدَ عَبْدِي، فَيَقُولُونَ: نَعَمْ، فَيَقُولُ: قَبَضْتُمْ ثَمَرَةَ فُؤَادِهِ، فَيَقُولُونَ: نَعَمْ، فَيَقُولُ: فَمَاذَا قَالَ عَبْدِي؟ فَيَقُولُونَ: حَمِدَكَ واسْتَرْجَعَ، فَيَقُولُ اللَّهُ تَعَالَى: ابْنُوا لِعَبْدِي بَيْتاً فِي الْجَنَّةِ، وَسَمُّوهُ بَيْتَ الْحَمْدِ). رَاوَهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

922- Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wêxtê zaroka bendeyekî dimre Xwedê ji milyaketan re dibêje: Qey we ruhê zaroka bendeyê min standiye? Ew jî dibêjin: Belê. Xwedê te'ala dîsa dibêje: Qey we fêkiya ber dilê wî hilda? Ew jî dibêjin: Belê. Xwedê te'ala dibêje: Baş e bendeyê min çi got? Milyaket dibêjin: Wî hemd; te û îstirca' kir. (Ango got: Bêguman em yê Xwedê ne û bes emê dîsa vegerine bal wî ve). Vêca Xwedê te'ala dibêje: Hûn ji bo vî bendeyê min di cennetê de malekê ava bikin û ewê bi mala hemdê bi nav bikin." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

٩٢٣- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (يَقُولُ اللَّهُ تَعَالَى: مَا لِعَبْدِي الْمُؤْمِنِ عِنْدِي جَزَاءٌ إِذَا قَبَضْتُ صَفِيَّهُ مِنْ أَهْلِ الْدُنْيَا، ثُمَّ احْتَسَبَهُ إِلَّا الْجَنَّةَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

923- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedê te'ala dibêje: (Hedîsa Qudsî ye.) Wextê ez hezjêkerekî bendeyê xwe yê mu'min ji ehlê dunyayê bistînim, ew jî hêvîdar be ji xêrê, li bal min ji xeynê cennetê tiştek din tune." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٩٢٤- وَعَنْ أُسَامَةَ بْنِ زَيْدٍ قَالَ: أَرْسَلَتْ إِحْدَى بَنَاتِ النَّبِيِّ ﷺ إِلَيْهِ تَدْعُوهُ وَتُخْبِرُهُ أَنَّ صَبِيّاً لَهَا، أَوْ ابْناً، فِي الْمَوْتِ فَقَالَ للرَّسُولِ: (ارْجِعْ إِلَيْهَا، فَأَخْبِرْهَا أَنَّ لِلهِ تَعَالَى مَا أَخَذَ وَلَهُ مَا أَعْطَى، وَكُلُّ شَيْءٍ عِنْدَهُ بِأَجَلٍ مُسَمَّىً، فَمُرْهَا، فَلْتَصْبِرْ وَلْتَحْتَسِبْ....) وَذَكَرَ تَمَامَ الْحَدِيثِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

924- Ji Usameyê kurê Zeyd (r.), got: Keçeke Pêxember (s.), mirovek şande bal Pêxember (s.) û jê re got: Zarokeka keça wî nexweş e û li ber mirinê ye. Pêxemberê Xwedê (s.) ji qasid re got: “Tu vegere û ji wê re bêje: Bêguman Xweda te‘ala serbest e dê bide û bistîne û ji her tiştî re li bal wî wextekî diyarkirî heye. Vêca tu emrê wê bike bila sebrê bike û xêra wî ji xwe re hêvî bike.” Û temamê hedîsê zikir kir. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ جَوَازِ الْبُكَاءِ عَلَى الْمَيِّتِ بِغَيْرِ نَدْب
## CAIZBÛNA GIRIYÊ BÊQÊRÎN Û QAJÎN Û FÎXAN LI SER MIRÎ

أَمَّا النِّيَاحَةُ فَحَرَامٌ، وَسَيَأْتِي فِيهَا بَابٌ فِي كِتَابِ النَّهيِ إِنْ شَاءَ اللَّهُ تَعَالَى، وَأَمَّا الْبُكَاءُ فَجَاءَتْ أَحَادِيثُ بِالنَّهيِ عَنْهُ وإِنَّ الْمَيِّتَ يُعَذَّبُ بِبُكَاءِ أَهْلِهِ، وَهِيَ مُتَأَوَّلَة مَحمُولَة عَلَى مَنْ أَوْصَى بِهِ، وَالنَّهيُ هُوَ عَنِ الْبُكَاءِ الَّذِي فِيهِ نَدْب أَوْ نِيَاحَة، وَالدَّلِيلُ عَلَى جَوَازِ الْبُكَاءِ بِغَيْرِ نَدْبٍ وَلَا نِيَاحَةٍ أَحَادِيثُ كَثِيرَة مِنْهَا:

Heçîka fîxan heram e û di vê derbarê de di kitêba nehyê de wê babek were, înşaellah. Lê giriyê bi deng di derbarê nehya wê de pir hedîs hatine ku mirî bi sedem giriyê ehlê mala xwe tê ezab dayin. Lê ew hedîs hatine te’wîl û hemil kirin li ser wî kesê ku girî wesiyet kiriye. Nehî, bes ji giriyê bi qêrîn û fîxan e û delîla ca’izbûna giriyê bêqêrîn û fîxan ev hedîsên jêrê ne.

٩٢٥- عَنِ ابْنِ عُمَرَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ عَادَ سَعْدَ بْنَ عُبَادَةَ، وَمَعَهُ عَبْدُ الرَّحْمَنِ بْنُ عَوْفٍ، وَسَعْدُ بْنُ أَبِي وَقَّاصٍ، وعَبْدُ الله بْنُ مَسْعُودٍ ﷺ فَبَكَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَلَمَّا رَأَى الْقَوْمُ بُكَاءَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ بَكَوْا، فَقَالَ: (أَلَا تَسْمَعُونَ؟ إِنَّ الله لَا يُعَذِّبُ بِدَمْعِ الْعَيْنِ، وَلَا بِحُزْنِ الْقَلْبِ، وَلَكِنْ يُعَذِّبُ بِهَذَا أَوْ يَرْحَمُ). وَأَشَارَ إِلَى لِسَانِهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

  

925- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) çû serdana Se'dê kurê 'Ubade ku 'Ebdurrehmanê kurê 'Ewf, Se'dê kurê Ebû Weqqas û 'Ebdullahê kurê Mes'ûd (r.) jî bi wî (s.) re bûn. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) giriya. Wextê xelkê dîtin ku Pêxemberê Xwedê (s.) digrî ew jî giriyan. Li ser vê ya Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ka guhê xwe bidine min. Bêguman Xweda bi sedem hêstirên çavan û bi êşa dila ezab nade, lê bi vê ya – îşaretê zimanê xwe kir– ezab dide û yan jî rehmê dike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩٢٦- وَعَنْ أُسَامَةَ بْنِ زَيْدٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ رُفِعَ إِلَيْهِ ابْنُ ابْنَتِهِ وَهُوَ فِي الْمَوْتِ، فَفَاضَتْ عَيْنَا رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ لَهُ سَعْدٌ: مَا هَذَا يَا رَسُولَ الله؟ قالَ (هَذِهِ رَحْمَةٌ جَعَلَهَا الله تَعَالَى فِي قُلُوبِ عِبَادِهِ، وَإِنَّمَا يَرْحَمُ اللَّهُ مِنْ عِبَادِهِ الرُّحَمَاءَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

926- Ji Usameyê kurê Zeyd (r.) hatiye rîwayetkirin ku kurê keça wî ku ew di halê mirinê de bû anîne bal Pêxemberê Xwedê (s.). Her du çavên Pêxemberê Xwedê (s.) tijî bûn. Vêca Se'd (r.) got: Eva çi ye, ya Pêxemberê Xwedê? Ewî (s.) got: "Eva rehm e, Xwedê te'ala ew xistiye dilê bendeyê xwe. Bêguman Xweda di nav bendeyê xwe de rehmê bes li dilovanan dike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩٢٧- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ دَخَلَ عَلَى ابْنِهِ إِبْرَاهِيمَ وَهُوَ يَجُودُ بِنَفْسِهِ، فَجَعَلَتْ عَيْنَا رَسُولِ اللَّهِ ﷺ تَذْرِفَانِ، فَقَالَ لَهُ عَبْدُ الرَّحْمَنِ بْنُ عَوْفٍ: وَأَنْتَ يَا رَسُولَ اللَّهِ فَقَالَ: (يَا ابْنَ عَوْفٍ إِنَّهَا رَحْمَةٌ) ثُمَّ أَتْبَعَهَا بِأُخْرَى فَقَالَ: (إِنَّ الْعَيْنَ تَدْمَعُ، وَالْقَلْبَ يَحْزَنُ، وَلَا نَقُولُ إِلَّا مَا يُرْضِي رَبَّنَا، وَإِنَّا بِفِرَاقِكَ يَا إِبْرَاهِيمُ لَمَحْزُونُونَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

927- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) çû cem kurê xwe Îbrahîm (r.), ku ewî êdî ruh dida. Vêca hêstir kete her du çavên Pêxemberê Xwedê (s.) Li ser vê yekê 'Ebdurrehmenê kurê 'Ewf (r.) jê re got: Tu jî, ya Pêxemberê Xwedê? Ewî (s.) jî got: "Ya kurê 'Ewf! Bêguman eva rehm e." Paşê jî çavê wî dîsa şil bûn û Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bêguman çav şil dibe, dil jî xemxwar dibe û em jî tiştekî ku xweşa Rebbê me neçe nabêjin. Ya Îbrahîm! Em bi cûdahiya te xemgîn in." *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ الْكَفِّ عَنْ مَا يُرَى مِنَ الْمَيِّتِ مِنْ مَكْرُوه

## NEGOTINA TIŞTÊN NEPAK KU JI MIRÎ HATIYE DÎTIN

٩٢٨- عَنْ أَبِي رَافِعٍ أَسْلَم مَوْلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ غَسَّلَ مَيِّتاً فَكَتَمَ عَلَيْهِ غَفَرَ الله لَهُ أَرْبَعِينَ مَرَّةً). رَوَاهُ الحَاكِم، وَقَالَ: صَحِيحٌ عَلَى شَرْطِ مُسْلِمٍ.

928- Ji Ebû Rafî‘ Eslem xizmetkarê Pêxemberê Xwedê (s.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê miriyekî bişo û tiştê nepak jê dîtî veşêre Xwedê te‘ala jî ewî kesî çil carî dibexşîne.” *Hakim rîwayet kiriye û gotiye hedîs li ser şertê Muslim sehîh e.*

## بَابُ الصَّلَاةِ عَلَى الْمَيِّتِ

## NIMÊJA MIRÎ

٩٢٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قالَ رَسُولُ الله ﷺ: (مَنْ شَهِدَ الْجِنَازَةَ حَتَّى يُصَلَّى عَلَيْهَا، فَلَهُ قِيرَاطٌ، وَمَنْ شَهِدَهَا حَتَّى تُدْفَنَ، فَلَهُ قِيرَاطَانِ) قِيلَ: وَمَا الْقِيرَاطَانِ؟ قَالَ: (مِثْلُ الْجَبَلَيْنِ الْعَظِيمَيْنِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

929- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê li cem cenazeyekî amade bibe heta nimêj li ser bê kirin ji wî kesî re qîratek heye. Kesê li cem cenazeyekê amade bibe heta bê definkirin ji bo wî jî du qîrat hene.” Sehabiyan gotin: Du qîrat çi ne, ya Pêxemberê Xwedê? Ewî (s.) got: “Wekî du çiyayên mezin in. (Yanî xêra wî kesî wekî du çiyayên mezin in).” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩٣٠- وَعَنْهُ، أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (مَنِ اتَّبَعَ جِنَازَةَ مُسْلِمٍ إِيمَاناً وَاحْتِسَاباً، وَكَانَ مَعَهُ حَتَّى يُصَلَّى عَلَيْهَا وَيُفْرَغَ مِنْ دَفْنِهَا، فَإِنَّهُ يَرْجِعُ مِنَ الأَجْرِ بِقِيرَاطَيْنِ كُلُّ قِيرَاطٍ مِثْلُ أُحُدٍ، وَمَنْ صَلَّى عَلَيْهَا، ثُمَّ رَجَعَ قَبْلَ أَنْ تُدْفَنَ، فَإِنَّهُ يَرْجِعُ بِقِيرَاطٍ). رَوَاهُ البُخَارِي.

930- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê bi bawer û hêvîdariya xêrê bikeve pey cenazeyê misilmanekî, û bi cenazê re be heta li ser bê nimêj kirin û heta bê gorkirin, bêguman ew xêra du qîrata vedigere ku her qîratek wekî çiyayê Uhudê ye. Û kesê li ser

cenazê nimêj bike û beriya cenaze bê gorkîrên vegere, bêguman ew jî bi qîratekê vedigere.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

٩٣١- وَعَنْ أُمِّ عَطِيَّةَ رضي الله عنها قَالَتْ: نُهِينَا عَنِ اتِّبَاعِ الْجَنَائِزِ، وَلَمْ يُعْزَمْ عَلَيْنَا. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

931- Ji Ummu ‘Atiyye (r.), got: Em jinik hatine men‘kirin ji pey çûyina cenazan, lê ev yeka li ser me nehate heramkirin. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ إِسْتِحْبَاب تَكْثِير الْمُصَلِينْ عَلَى الْجَنَازَةِ

## MUSTEHEBBÛNA PIRANIYA NIMÊJKERÊN LI SER MIRÎ

٩٣٢- عَنْ عَائِشَةَ رضي الله عنها قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا مِنْ مَيِّتٍ يُصَلِّي عَلَيْهِ أُمَّةٌ مِنَ الْمُسْلِمِينَ يَبْلُغُونَ مَائَةً كُلُّهُم يَشْفَعُونَ لَهُ إِلَّا شُفِّعُوا فِيهِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

932- Ji ‘Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Ew miriyê ku koma misilmanê ku li ser nimêj dikin hejmara wan bigihêje sedî û ew sed mirov hemû di derbarê wî de mehderê bikin, miheqeq mehdera wan ya derbarê wî de tê qebûl kirin.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٩٣٣- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (مَا مِنْ رَجُلٍ مُسْلِمٍ يَمُوتُ، فَيَقُومُ عَلَى جِنَازَتِهِ أَرْبَعُونَ رَجُلاً لَا يُشْرِكُونَ بِاللَّهِ شَيْئاً إِلَّا شَفَّعَهُمُ الله فِيهِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

933- Ji kurê ‘Ebbas (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Misilmanek bimre û li ser cenazê wî çil mirovê ku ji Xwedê re tu tiştekî naxe hevbeş kom bin, miheqeq Xwedê dê mehdera wan ya di derbarê wî de qebûl bike.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٩٣٤- وَعَنْ مَرْثَدِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ الْيَزَنِيِّ قَالَ: كَانَ مَالِكُ بْنُ هُبَيْرَةَ رضي الله عنه إِذَا صَلَّى عَلَى الْجَنَازَةِ، فَتَقَالَّ النَّاسَ عَلَيْهَا، جَزَّأَهُمْ عَلَيْهَا ثَلَاثَةَ أَجْزَاءٍ، ثُمَّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ صَلَّى عَلَيْهِ ثَلَاثَةُ صُفُوفٍ، فَقَدْ أَوْجَبَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

934- Ji Mersedê kurê ‘Ebdullahê Yezenî (r.), got: Wextê Malikê kurê Hubeyre (r.) li ser cenazekê nimêj bikira û vêca nimêjker kêm bidîta, ewî nimêjker dikire sê sef û paşê jî digot: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê

sê sef nimêjker nimêja wî bike ewî cennet heq kiriye.” *Ebû Dawûd û Tirmizî riwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e*

## بَابُ مَا يُقْرَأُ فِي صَلَاةِ الْجَنَازَةِ
## TIŞTÊ DI NIMÊJA CENAZEYÎ DE TÊNE XWENDIN

يُكَبِّرُ أَرْبَعَ تَكْبِيرَاتٍ، يَتَعَوَّذُ بَعْدَ الأُولَى، ثُمَّ يقْرَأُ فَاتِحَةَ الْكِتَابِ، ثُمَّ يُكَبِّرُ الثَّانِيَةَ، ثُمَّ يُصَلِّي عَلَى النَّبِيِّ ﷺ فيَقُولُ: اللَّهُمَّ صَلِّ عَلَى مُحَمَّدٍ وعَلَى آلِ مُحَمَّدٍ، وَالأَفْضَلُ أَنْ يتمِّمهُ بِقَوْلِهِ: كَمَا صَلَّيْتَ عَلَى إِبْرَاهِيمَ، إِلَى قَوْلِهِ: حَمِيدٌ مَجِيد، وَلَا يَقُولُ مَا يَفْعَلَهُ كَثِير مِنَ الْعَوَامِّ مِنْ قِرَاءَتِهِمْ (إِنَّ اللَّهَ وَمَلَائِكَتَهُ يُصَلُّونَ عَلَى النَّبِيِّ) فَإِنَّهُ لَا تصحُّ إِذَا اِقْتَصَرَ عَلَيْهِ، ثُمَّ يُكَبِّرُ الثَّالِثَةَ وَيَدْعُو لِلميِّتِ وَلِلْمُسْلِمِينَ بِمَا سَنذْكرهُ مِنَ الأَحَادِيثِ، إِنْ شَاءَ الله تَعَالَى، ثُمَّ يُكَبِّرُ الرَّابِعَةَ وَيَدْعُو، وَمِنْ أَحْسَنِهِ: اللَّهُمَّ لَا تحرِمْنَا أَجْرهُ، وَلَا تفْتنَّا بَعْدهُ، وَاغْفِرْ لَنَا وَلَهُ، وَالْمُخْتَارُ أَنَّهُ يطوِّلُ الدُّعَاءَ فِي الرَّابِعَةِ خِلَافَ مَا يَعْتَادهُ أَكْثَرُ النَّاسِ لِحَدِيثِ ابْنِ أَوْفَى الَّذِي سَنَذْكُرُهُ، إِنْ شَاءَ الله تَعَالَى.

فَأَمَّا الأَدْعِيَةُ الْمَأْثُورةُ بَعْدَ التَّكْبِيرَةِ الثَّالِثَةِ فَمِنْهَا:

Nimêjker çar tekbîran dide: Piştî tekbîra yekem E’ûzû û piştre jî Fatîheyê dixwîne. Paşê tekbîra duyem tîne, piştre selewata li ser Pêxember (s.) dixwîne û wiha dibêje: “Ellahumme sellî ela Muhemmedîn we alî Muhemmed.” Lê ya qenctir ew e ku selewatê heta “hemîdun mecîd” temam bike.

Bila neke wekî kirina gelekî xelkê ku evê ayetê; “Înnellahe we mele’îketehu yusellûne elen-nebiyy...”[1] dixwînin. Lewra wextê kurt bike li ser vê û selewata nexwîne nimêja wî dirust nîne.

Paşê yê tekbîra sêyem bîne û ji bo mirî û misilmana bi van hedîsên ku emê zikir bikin înşaellahu te‘ala, yê dua bike. Paşê yê tekbîra çarem bîne, yê dua bike û çêtirtirê dua jî ev e: “Ellahumme la tehrîmna ecrehû wela teftînna be’dehû wexfîr lena we lehû.”[2]

Ya baş ew e ku nimêjker, xilafa ‘adetê gelekî însanan, ji bo hedîsa Îbnu ‘Ewf; ewa ku emê hê zikir bikin –înşaellahu te‘ala,– duayê xwe dirêj bike.

1 Ehzab, 33/56
2 Yanî; Xweda, tu me ji xêra wî bêpar nekî, tu me piştî wî nebî fitneyê û me û wî bibexişînî.

Duayê me'sûrê ku bêne xwendin piştî tekbîra sêyem, ev hêdisê hanê ne:

٩٣٥- عَنْ أَبِي عَبْدِ الرَّحْمَنِ عَوْفِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ قَالَ: صَلَّى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَلَى جَنَازَةٍ، فَحَفِظْتُ مِنْ دُعَائِهِ وَهُوَ يَقُولُ: (اللَّهُمَّ اغْفِرْ لَهُ، وَارْحَمْهُ، وَعَافِهِ، وَاعْفُ عَنْهُ، وَأَكْرِمْ نُزُلَهُ، وَوَسِّعْ مُدْخَلَهُ وَاغْسِلْهُ بِالْمَاءِ وَالثَّلْجِ وَالْبَرَدِ، وَنَقِّه مِنَ الْخَطَايَا، كَمَا نَقَّيْتَ الثَّوْبَ الأَبْيَضَ مِنَ الدَّنَسِ، وَأَبْدِلْهُ دَاراً خَيْراً مِنْ دَارِهِ، وَأَهْلاً خَيْراً مِنْ أَهْلِهِ، وَزَوْجاً خَيْراً مِنْ زَوْجِهِ، وَأَدْخِلْهُ الْجَنَّةَ، وَأَعِذْه مِنْ عَذَابِ الْقَبْرِ، وَمِنْ عَذَابِ النَّارِ) حَتَّى تَمَنَّيْتُ أَنْ أَكُونَ أَنَا ذَلِكَ الْمَيِّتَ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

935- Ji Ebû 'Ebdurrehman 'Ewfê kurê Malik (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) li ser cenazeyekî nimêj kir, min jî duayê wî ji ber kir. Ewî (s.) wiha digot: "Xweda! Tu evî miriyî bibexşînî, rehmê lê bikî, ewî ji nexweşiyê gorê biparêzî, li kêmasiyên wî biborî, qonaxa wî xweş bikî, cihê wî fireh bikî, ewî bi avê û bi berfê û bi teyrokê bişo, wekî paqijiya kincê spî ji qirêjayê tu jî ewî ji guneha paqij bikî, tu maleke ji mala wî û ehlekî ji ehlê wî û jineke ji jina wî çêtir pêşve bidê, tu ewî daxilî cennetê bikî û ewî ji 'ezabê gorê û ji 'ezabê êgir biparêzî." (Ebû 'Ebdurrehman dibêje:) Heta min xwest ku ez, ew mirî bûma. *Muslim riwayet kiriye.*

٩٣٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ وَأَبِي قَتَادَةَ، وَأَبِي إِبْرَاهِيمَ الأَشْهَلِي عَنْ أَبِيهِ وَأَبُوه صَحَابِيٌّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهُ صَلَّى عَلَى جَنَازَةٍ فَقَالَ: (اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِحَيِّنَا وَمَيِّتِنَا، وَصَغِيرِنَا وَكَبِيرِنَا، وَذَكَرِنَا وَأُنْثَانَا، وَشَاهِدِنَا وَغَائِبِنَا، اللَّهُمَّ مَنْ أَحْيَيْتَهُ مِنَّا، فَأَحْيِهِ عَلَى الإِسْلَامِ، وَمَنْ تَوَفَّيْتَهُ مِنَّا، فَتَوَفَّهُ عَلَى الإِيمَانِ، اللَّهُمَّ لَا تَحْرِمْنَا أَجْرَهُ، وَلَا تَفْتِنَّا بَعْدَهُ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي مِن رِوَايَةِ أَبِي هُرَيْرَةَ وَالأَشْهَلِيِّ، وَرَوَاهُ أَبُو دَاوودَ مِنْ رِوَايَةِ أَبِي هُرَيْرَةَ وَأَبِي قَتَادَةَ، قَالَ الْحَاكِمُ: حَدِيثُ أَبِي هُرَيْرَةَ صَحِيح عَلَى شَرْطِ الْبُخَارِيِّ وَمُسْلِمٍ، قَالَ التِّرْمِذِيُّ: قَالَ الْبُخَارِيُّ: أَجْمَعُ رِوَايَاتِ هَذَا الْبَابِ رِوَايَةُ الأَشْهَلِيِّ، قَالَ الْبُخَارِيُّ: وَأَصَحّ شَيءٍ فِي الْبَابِ حَدِيثُ عوْفِ بْنِ مَالِكٍ.

936- Ji Ebû Hureyre û ji Ebû Qetade û ji Ebû Îbrahîm Eşhelî ku ewî jî ji bavê xwe, bavê wî sehabî ye (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) li ser cenazek nimêj kir û wiha got: "Xweda! Tu sax û miriyên me, piçûk û mezinên me, mêr û jinên me û hazir û nehazirên me bibexşînî. Xwedayo!

Kesê ku te ji me sax hiştiye tu ewî li ser Îslamê bihêlî û kesê ji me ku tu yê wî bimirînî tu wî li ser îmanê bimirîne. Xwedayo! Tu me ji xêra wî bêpar neke û me piştî wî (bi fitna) îmtihan neke." *Tirmizî jî seneda Ebû Hureyre û Eşhelî riwayet kiriye. Û Ebû Dawûd jî ji seneda Ebû Hureyre û Ebû Qetade riwayet kiriye.*

Hakim got: Hedîsa Ebû Hureyre li ser şertê Buxarî û Muslim sehîh e. Tirmizî got: Buxarî gotiye: Sehîhtirê senedê vê hedîsê ya Eşhelî ye. Buxarî got: Sehîhtirê hedîsên vî babî hedîsa 'Ewfê kurê Malik e.

٩٣٧- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِذَا صَلَّيْتُمْ عَلَى المَيِّتِ، فَأَخْلِصُوا لَهُ الدُّعَاءَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد.

937- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Wextê we li ser miriyekî nimêj kir hûn bi safî ji wî re dua bikin." *Ebû Dawûd riwayet kiriye.*

٩٣٨- وَعَنْهُ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ فِي الصَّلَاةِ عَلَى الْجَنَازَةِ: (اللَّهُمَّ أَنْتَ رَبُّهَا، وَأَنْتَ خَلَقْتَهَا، وَأَنْتَ هَدَيْتَهَا لِلإِسْلَامِ، وَأَنْتَ قَبَضْتَ رُوحَهَا، وَأَنْتَ أَعْلَمُ بِسِرِّهَا وَعَلَانِيَتِهَا، جِئْنَاكَ شُفَعَاءَ لَهُ، فَاغْفِرْ لَهُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد.

938- Dîsa ji wî (r.), ji Pêxember (s.) di derbarê (duayê) ser cenazê de: "Xweda! Tu Rebbê vî cenazeyê yî, te ew afirandiye, te ew rasterê kiriye bal Îslamê ve, te ruhê wî standiye û tu bi rewşa wî ya veşartî û eşkere dizanî. Em ji wî re bi mehdervanî hatine dergehê te ku tu wî bibexşînî." *Ebû Dawûd riwayet kiriye.*

٩٣٩- وَعَنْ وَاثِلَةَ بْنِ الأَسْقَعِ ﷺ قَالَ: صَلَّى بِنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَلَى رَجُلٍ مِنَ الْمُسْلِمِينَ، فَسَمِعْتُهُ يَقُولُ: (اللَّهُمَّ إِنَّ فُلَانَ ابْنَ فُلَانٍ فِي ذِمَّتِكَ وَحَبْلِ جِوَارِكَ، فَقِهِ فِتْنَةَ الْقَبْرِ، وَعَذَابَ النَّارِ، وَأَنْتَ أَهْلُ الْوَفَاءِ وَالْحَمْدِ، اللَّهُمَّ فَاغْفِرْ لَهُ وَارْحَمْهُ، إِنَّكَ أَنْتَ الْغَفُورُ الرَّحِيمُ) رَوَاهُ أَبُو دَاوُد.

939- Ji Wasileyê kurê Esqe' (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) digel me li ser mirovekî misilman nimêj kir û min jê seh kir wiha digot: "Xweda! Bêguman filan kesê kurê filan kes di zimet û parastina te de ye. Vêca tu wî ji fitna gorê û ji 'ezabê êgir biparêzî. Lewra tu ehlê dilsoziyê û hemdê yî.

Xwedayo! Tu ewî bibexşînî û rehmê lê bikî. Bêguman tu bexişkar û dilovanî.” *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

٩٤٠- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ أَبِي أَوْفَى، أَنَّهُ كَبَّرَ عَلَى جَنَازَةِ ابْنَةٍ لَهُ أَرْبَعَ تَكْبِيرَاتٍ، فَقَامَ بَعْدَ الرَّابِعَةِ كَقَدْرِ مَا بَيْنَ التَّكْبِيرَتَيْنِ يَسْتَغْفِرُ لَهَا وَيَدْعُو، ثُمَّ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللهِ ﷺ يَصْنَعُ هكَذَا.

وَفِي رِوَايَةٍ: كَبَّرَ أَرْبَعاً، فَمَكَثَ سَاعَةً حَتَّى ظَنَنْتُ أَنَّهُ سَيُكَبِّرُ خَمْساً، ثُمَّ سَلَّمَ عَنْ يَمِينِهِ وَعَنْ شِمَالِهِ، فَلَمَّا انْصَرَفَ قُلْنَا لَهُ: مَا هَذَا؟ فَقَالَ: إِنِّي لَا أَزِيدُكُمْ عَلَى مَا رَأَيْتُ رَسُولَ اللهِ يَصْنَعُ، أَوْ: هَكَذَا صَنَعَ رَسُولُ اللهِ ﷺ. رَوَاهُ الحَاكِم، وَقَالَ: حَدِيثٌ صَحِيح.

940- Ji ‘Ebdullahê kurê Ebû Ewfa (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî li ser cenazê keça xwe çar tekbîr anî. Piştî tekbîra çaran qasî sekna navbera du tekbîran de sekinî û jê re îstixfar û dua dikir. Paşê got: Pêxemberê Xwedê (s.) jî wiha dikir.

Di rîwayetake dîtir de: Çar tekbîr anî û piştre demeke dirêj rawestiya. Me zen kir wê tekbîra pêncan bîne. Paşê silav da aliyê xwe yê rastê û yê çepê. Wextê ji nimêjê vala bû me jê re got: “Eva çi bû? Ewî (r.) got: “Min ji bo we li ser tiştê ku min ji Pêxemberê Xwedê (s.) dîtiye ku ewî kiriye zêde nekir. Yan jî: Pêxemberê Xwedê (s.) jî wiha dikir.” *Hakim rîwayet kiriye û gotiye hedîs sehîh e.*

## بَابُ الإِسْرَاعِ بِالْجَنَازَةِ
## LEZANDINA RAKIRINA CENAZÊ

٩٤١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (أَسْرِعُوا بِالْجِنَازَةِ، فَإِنْ تَكُ صَالِحَةً، فَخَيْرٌ تُقَدِّمُونَهَا إِلَيْهِ، وَإِنْ تَكُ سِوَى ذلِكَ، فَشَرٌّ تَضعُونَهُ عَنْ رِقَابِكُمْ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

941- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxember (s.) gotiye: “Hûn rakirina cenazê bilezînin. Heger ew qenc be, (tiştê ku hûn dikin) tiştek baş e hûn ewî digihêjînin cihê wî û eger ji xeynê wê be (tiştê ku hûn dikin) tiştek xerab e hûn ewê ji milê xwe datînin. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩٤٢- وَعَنْ أَبِي سَعِيدِ الْخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يَقُولُ: (إِذَا وُضِعَتِ الْجِنَازَةُ.

فَاحْتَمَلَهَا الرِّجَالُ عَلَى أَعْنَاقِهِمْ، فَإِنْ كَانَتْ صَالِحَةً، قَالَتْ: قَدِّمُونِي، وَإِنْ كَانَتْ غَيْرَ صَالِحَةٍ، قَالَتْ لِأَهْلِهَا: يَا وَيْلَهَا أَيْنَ تَذْهَبُونَ بِهَا يَسْمَعُ صَوْتَهَا كُلُّ شَيْءٍ إِلَّا الإِنْسَانَ، وَلَوْ سَمِعَ الإِنْسَانُ لَصَعِقَ). رَوَاهُ البُخَارِي.

942-Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) digot: "Wextê cenaze di darbestê de hate danîn û mirovan ew hilgirtin danîne ser milê xwe; vêca eger ew qenc be dibêje: Min bi lez bibin û eger xirab be jî ji ehlê xwe re wiha dibêje: Heyf! Hûn min bi kûde dibin? Ji xeynê însanan her tişt dengê wî dibihîze û eger însanan jî dengê wî seh bikira wê ji tirs û toqî bêhiş biketa." *Buxarî riwayet kiriye.*

## بَابُ تَعْجِيلِ قَضَاءِ الدَّيْنِ عَنِ الْمَيِّتِ

## LEZANDINA DAYINA DEYNÊ MIRÎ

٩٤٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (نَفْسُ الْمُؤْمِنِ مُعَلَّقَةٌ بِدَيْنِهِ حَتَّى يُقْضَى عَنْهُ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

943- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Nefsa (ruhê) mu'min heta bê dayin bi deynê wî ve girêdayî ye." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

٩٤٤- وَعَنْ حُصَيْنِ بْنِ وَحْوَحٍ ﷺ أَنَّ طَلْحَةَ بْنَ الْبَرَاءِ ﷺ مَرِضَ، فَأَتَاهُ النَّبِيُّ ﷺ يَعُودُهُ فَقَالَ: (إِنِّي لَا أُرَى طَلْحَةَ إِلَّا قَدْ حَدَثَ فِيهِ الْمَوْتُ فَآذِنُونِي بِهِ، وَعَجِّلُوا بِهِ، فَإِنَّهُ لَا يَنْبَغِي لِجِيفَةِ مُسْلِمٍ أَنْ تُحْبَسَ بَيْنَ ظَهْرَانَيْ أَهْلِهِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود.

944- Ji Husaynê kurê Wehweh (r.) hatiye rîwayetkirin ku Telheyê kurê Bera' (r.) nexweş ket. Vêca Pêxember (s.) hate serdana wî û got: "Bêguman ez dibînim ku Telhe yê mirinê ye. Vêca hûn bi mirina wî min agahdar bikin û rakirina wî jî bilezînin. Lewra mayina cenazê misilman di nav ehlê wî de bêrê ye." *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

## بَابُ الْمَوْعِظَةِ عِنْدَ الْقَبْرِ

## WE'Z Û ŞÎRETÊ LI SER GORÊ

٩٤٥- عَنْ عَلِيٍّ ﷺ قَالَ: كُنَّا فِي جَنَازَةٍ فِي بَقِيعِ الْغَرْقَدِ فَأَتَانَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَعَدَ،

  

وَقَعَدْنَا حَوْلَهُ وَمَعَهُ مِخْصَرَةٌ فَنَكَسَ وَجَعَلَ يَنْكُتُ بِمِخْصَرتِهِ، ثُمَّ قَالَ: (مَا مِنْكُمْ مِنْ أَحَدٍ إِلَّا وَقَدْ كُتِبَ مَقْعَدُهُ مِنَ النَّارِ وَمَقْعَدُهُ مِنَ الْجَنَّةِ) فَقَالُوا: يَا رَسُولَ الله أَفَلَا نَتَّكِلُ عَلَى كِتَابِنَا؟ فَقَالَ: (اعْمَلُوا، فَكُلٌّ مُيَسَّرٌ لِمَا خُلِقَ لَهُ) وَذَكَرَ تَمَامَ الْحَدِيثِ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ

945- Ji ‘Elî (r.), got: Em di goristana Beqî‘ul-Xerqedê de, di cenazeyekî de bûn. Pêxemberê Xwedê (s.) hate cem me û rûnişt. Vêca em jî li dora wî rûniştin. Di destê wî de gopalek hebû. Pêxemberê Xwedê (s.) fikirî, bi gopal xwe çend xêz kişand û paşê got: “Tu kes ji we tune ku cihê wî yê cennetê û cihê wî yê cehennemê nehatibe nivîsandin.” Vêca sehabiyan gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Em xwe nespêrine kitêba xwe? Ewî (s.) jî got: “Naxêr, hûn xebata xwe bikin. Kî, ji bo çi hatibe afirandin, ew yeka ji wî re wê bê hêsan kirin.” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ الدُّعَاءِ لِلْمَيِّتِ
## PIŞTÎ GORKIRINÊ JI MIRÎ RE DUA

٩٤٦- عَنْ أَبِي عَمْرٍو - وَقِيلَ: أَبُو عَبْدِ اللَّهِ، وَقِيلَ: أَبُو لَيْلَى عُثْمَانَ بْنِ عَفَّانَ ﷺ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ إِذَا فَرَغَ مِنْ دَفْنِ المَيِّتِ وَقَفَ عَلَيْهِ، وَقَالَ: (اِسْتَغْفِرُوا لِأَخِيكُمْ وَسَلُوا لَهُ التَّثْبِيتَ، فَإِنَّهُ الآنَ يُسْأَلُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ.

946- Ji Ebû ‘Emr, yan Ebû ‘Ebdullah yan jî Ebû Leyla, Osmanê kurê ‘Effan (r.), got: Wextê Pêxember (s.) ji defn û gorkirina mirî vala dibû, li ser disekinî û wiha digot: “Hûn ji birayê xwe re daxwaza bexşandinê bikin û ji Xwedê jî jê re ‘tesbît’ê[1] bixwazin. Lewra ew, niha tê pirsiyar kirin.” *Ebû Dawûd riwayet kiriye.*

٩٤٧- وَعَنْ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ قَالَ: إِذَا دَفَنْتُمُونِي، فَأَقِيمُوا حَوْلَ قَبْرِي قَدْرَ مَا تُنحَرُ جَزُورٌ، وَيُقَسَّمُ لَحْمُهَا حَتَّى أَسْتَأْنِسَ بِكُمْ، وَأَعْلَمَ مَاذَا أُرَاجِعُ بِهِ رُسُلَ رَبِّي. رَوَاهُ مُسْلِمٌ. وَقَدْ سَبَقَ بِطُولِهِ، قَالَ الشَّافِعِيُّ رِحِمَهُ اللَّهُ: وَيُسْتحبُّ أَنْ يُقْرَأَ عِنْدَهُ شَيْءٌ مِنَ الْقُرْآنِ، وَإِنْ ختَمُوا الْقُرْآنَ كَانَ حَسَناً.

1 Ji Xwedê bixwazin ku ewî di pirsiyariya gorê de wî li ser baweriya wî pêdand û sabit bihêle.

947- Ji ‘Emrê kurê ‘As (r.), got: Wextê we ez defin kirim, dora gora min bi qasî serjêkirina hêstirekî û parevekirina goştê wî rawestin da ku ez bi we re nêzîkatî û dilsoziyê peyda bikim û da ku ez bizanim ka ezê bi çi awayî bersîva qasidê Rebbê xwe bidim.” *Muslim rîwayet kiriye.*

Ev hedîs bi dirêjî bihurî.

Îmamê Şafi‘î (r.) gotiye: Musteheb e ku li cem gorê hinek Qur’ana Pîroz bê xwendin. Lê eger Qur’anê xitim bikin baştir e.

## بَابُ الصَّدَقَة عَنِ الْمَيِّتِ وَالدُّعَاء لَهُ

## SEDEQEDAYIN Û DUAKIRINA JI BO MIRÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَالَّذِينَ جَاؤُوا مِنْ بَعْدِهِمْ يَقُولُونَ رَبَّنَا اغْفِرْ لَنَا وَلِإِخْوَانِنَا الَّذِينَ سَبَقُونَا بِالإِيمَانِ﴾

“Ewê dûv wan re hatin dibêjin: Ye Rebî! Tu gunehê me û yê birayê me ewanên ku beriya me bawerî anîne jî bibe.”[1]

٩٤٨- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ أَنَّ رَجُلاً قَالَ لِلنَّبِيِّ ﷺ: إِنَّ أُمِّي افْتُلِتَتْ نَفْسُها وَأُرَاهَا لَوْ تَكَلَّمَتْ تَصَدَّقَتْ، فَهَلْ لَهَا أَجْرٌ إِنْ تَصَدَّقْتُ عَنْهَا؟ قَالَ: (نَعَمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

948- Ji ‘Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî ji Pêxember (s.) re got: Dayika min nişkêve wefat kir. Ez wisa zen dikim eger wê biaxafta yê sedeqe bida. Vêca ez pêş wê ve sedeqe bidim ji wê re xêr heye? Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Belê.” *Buxari û Muslim rîwayet kirine.*

٩٤٩- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا مَاتَ الإِنْسَانُ انْقَطَعَ عَمَلُهُ إِلَّا مِنْ ثَلَاثٍ: صَدَقَةٍ جَارِيَةٍ، أَوْ عِلْمٍ يُنْتَفَعُ بِهِ، أَوْ وَلَدٍ صَالِحٍ يَدْعُو لَهُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

949- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê însan bimre ji xeynê sê tiştan deftera emelê wî tê girtin: Sedeqa cariye, ‘ilmê bikêr/feyde û yek jî zarekî Salih li pey xwe hiştibe jê re dua bike.” *Muslim rîwayet kiriye.*

1 Heşr, 59/10.

  

## بَابُ ثَنَاءِ النَّاسِ عَلَى الْمَيِّتِ
## JI MIRÎ RE PESNÊ ÎNSANA

٩٥٠- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: مَرُّوا بِجَنَازَةٍ، فَأَثْنَوا عَلَيْهَا خَيْراً، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (وَجَبَتْ). ثُمَّ مَرُّوا بِأُخْرَى، فَأَثْنَوْا عَلَيْهَا شَرّاً، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (وَجَبَتْ)، فَقَالَ عُمَر بْنُ الخَطَّابِ ﷺ: مَا وَجَبَتْ؟ قَالَ: (هَذا أَثْنَيْتُمْ عَلَيْهِ خَيْراً، فَوَجَبَتْ لَهُ الْجَنَّةُ، وَهَذَا أَثْنَيْتُمْ عَلَيْهِ شَرّاً، فَوَجَبَتْ لَهُ النَّارُ، أَنْتُمْ شُهَدَاءُ اللَّهِ فِي الأَرْضِ) رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

950- Ji Enes (r.), got: Rojekê (sehabe) di ber cenazekî re derbas bûn pesnê başiya wî dan, vêca Pêxember (s.) got: “Wacib bû.” Paşê di ber cenazekî din re derbas bûn û behsa xirabiya wî kirin. Pêxember (s.) dîsa got: “Wacib bû.” Vêca ‘Emerê kurê Xettab (r.) got: Çi wacib bû? Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Ewê ku we pesnê başiya wî da, ji wî re cennet wacib bû. Ewê ku we behsa xirabiya wî kir, ji wî re jî agir wacib bû. Lewra hûn li ser rûyê erdê govan û şahidê Xwedê ne.” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

٩٥١-وَعَنْ أَبِي الأَسْوَدِ قَالَ: قَدِمْتُ الْمَدِينَةَ، فَجَلَسْتُ إِلَى عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ ﷺ فَمَرَّتْ بِهِمْ جَنَازَةٌ، فَأُثْنِيَ عَلَى صَاحِبِهَا خَيْراً، فَقَالَ عُمَرُ: وَجَبَتْ، ثُمَّ مُرَّ بِأُخْرَى، فَأُثْنِيَ عَلَى صَاحِبِهَا خَيْراً، فَقَالَ عُمَرُ: وَجَبَتْ، ثُمَّ مُرَّ بِالْثَالِثَةِ، فَأُثْنِيَ عَلَى صَاحِبِهَا شَراً، فَقَالَ عُمَرُ: وَجَبَتْ، قَالَ أَبُو الأَسْوَدِ: فَقُلْتُ: وَمَا وَجَبَتْ، يَا أَمِيرَ الْمُؤْمِنِينَ؟ فَقَالَ: قُلْتُ كَمَا قَالَ النَّبِيّ ﷺ: (أَيُّمَا مُسْلِمٍ شَهِدَ لَهُ أَرْبَعَةٌ بِخَيْرٍ، أَدْخَلَهُ الله الْجَنَّة) فَقُلْنَا: وَثَلَاثَةٌ؟ قَالَ: (وَثَلَاثَةٌ) فَقُلْنَا: وَاثْنَانِ؟ قَالَ: (وَاثْنَانِ) ثُمَّ لَمْ نَسْأَلْهُ عَنِ الْوَاحِدِ. رَوَاهُ البُخَارِي.

951- Ji Ebul-Eswed (r.), got: Ez hatime Medîneyê û li cem ‘Umerê kurê Xettab (r.) rûniştim. Di ber wan re cenazeyek derbas bû û pesnê başiya wî hate dayin. Vêca Hz. ‘Umer (r.) got: Wacib bû. Paşê cenazeyek din derbas bû û vê carê jî behsa xirabiya wî hate kirin. Hz. ‘Umer dîsa got: Wacib bû. Paşê cenazeyekî din jî derbas bû û behsa wî jî bi xirabî hate kirin. Dîsa Hz. ‘Umer got: Wacib bû. Ebul-Eswed dibêje: Vêca min got: Ya mîrê mu’minan, çi wacib bû? Hz. ‘Umer got: Min jî wekî gotina Pêxember (s.) got ku wiha gotibû: “Kîjan misilman çar mirov govaniya başiya wî bikin,

Xwedê ewî daxilî cennetê dike." Me got: Lê sê mirov? Ewî (s.) got: "Sê jî." Me got: Lê du mirov? Ewî (s.) got: "Du mirov jî." Êdî me pirsa yekî nekir. *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ مَنْ مَاتَ لَهُ أَوْلَاد صِغَار

## FEZÎLETA WÎ KESÊ KU ZAROKÊN WÎ YÊ PIÇÛK BIMRIN

٩٥٢- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا مِنْ مُسْلِمٍ يَمُوتُ لَهُ ثَلَاثَةٌ لَمْ يَبْلُغُوا الْحِنْثَ إِلَّا أَدْخَلَهُ الله الْجَنَّةَ بِفَضْلِ رَحْمَتِهِ إِيَّاهُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

952- Ji Enesê kurê Malik (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Misilmanê ku sê zarokê wî yê negihîştibine çaxê azebiyê bimrin, Xwedê miheqeq dê ewî kesî daxilî cennetê bike bi sedem rehma wî ya li wan zarokan." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩٥٣- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا يَمُوتُ لِأَحَدٍ مِنَ الْمُسْلِمِينَ ثَلَاثَةٌ مِنَ الْوَلَدِ لَا تَمَسُّهُ النَّارُ إِلَّا تَحِلَّةَ الْقَسَمِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

﴿وَتَحِلَّةُ الْقَسَمِ﴾ قَوْلُ الله تَعَالَى ﴿وَإِنْ مِنْكُمْ إِلَّا وَارِدُهَا﴾ هُوَ الْعُبُورُ عَلَى الصِّرَاطِ، وَهُوَ جِسْرٌ مَنْصُوب عَلَى ظَهْرِ جَهَنَّمَ، عَافَانَا اللَّهُ مِنْهَا.

953- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Misilmanekî ku sê zarokên wî bimrin agir ewî bes bi qasî bi cih hatina sondê dişewitîne." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Bi cih hatina sondê ev gotina Xwedê ye: *"Ji we kesekî ku cehennemê nebîne tune."*[1] Derbasbûn û dîtina cehennemê; derbasbûna li ser pira siratê ye ku ew li ser cehennemê hatiye damezirandin. Xwedê biparêze.

٩٥٤- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: جَاءَتِ إِمْرَأَةٌ إِلَى رَسُولِ الله ﷺ فَقَالَتْ: يَا رَسُولَ الله ذَهَبَ الرِّجَالُ بِحَدِيثِكَ، فَاجْعَلْ لَنَا مِنْ نَفْسِكَ يَوْماً نَأْتِيكَ فِيهِ تُعَلِّمُنَا مِمَّا عَلَّمَكَ اللَّهُ، قَالَ: (اجْتَمِعْنَ يَوْمَ كَذَا وَكَذَا) فَاجْتَمَعْنَ، فَأَتَاهُنَّ النَّبِيُّ ﷺ فَعَلَّمَهُنَّ مِمَّا

1 Meryem, 19/71.

عَلَّمَهُ اللَّهُ، ثُمَّ قَالَ: (مَا مِنْكُنَّ مِنِ إِمْرَأَةٍ تُقَدِّمُ ثَلَاثَةً مِنَ الْوَلَدِ إِلَّا كَانُوا لَهَا حِجَاباً مِنَ النَّارِ) فَقَالَتِ إِمْرَأَةٌ: وَاثْنَيْنِ؟ فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (وَاثْنَيْنِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

954- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Jinek hate bal Pêxemberê Xwedê (s.) û got: Ya Pêxemberê Xwedê, ji axaftin û gotinên te bes mêr xêrê dibînin. Vêca tu rojekê ji bo me jinan diyar bike, em werin da tiştê ku Xwedê bi te daye zanîn tu jî hînî me bikî. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Hûn filan rojê kom bibin." Ew jî (wê rojê) kom bûn. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) hate bal wan û tiştê ku Xwedê bi wî daye zanîn hînî wan kir. Û paşê jî got: "Kîjan jina ji we ku di beriya xwe de sê zarok şandibin, ew zarok ji bo dayika xwe dê bibin perde li pêşberî êgir." Jinikekê got: Lê du zarok? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Du zarok jî." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ الْبُكَاءِ وَالْخَوْفِ عِنْدَ الْمرُورِ بِقُبُورِ الظَّالِمِينْ

## GIRÎ Û TIRSA LI NIK BIHURÎNA DI BER GORA ZALIMAN RE

٩٥٥- عَنِ ابْنِ عُمَرَ رضي الله عنهما: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ لِأَصْحَابِهِ يَعْنِي لَمَّا وَصَلُوا الْحِجْرَ، دِيَارَ ثَمُودَ: (لَا تَدْخُلُوا عَلَى هَؤُلَاءِ الْمُعَذَّبِينَ إِلَّا أَنْ تَكُونُوا بَاكِينَ، فَإِنْ لَمْ تَكُونُوا بَاكِينَ، فَلَا تَدْخُلُوا عَلَيْهِمْ، لَا يُصِيبُكُمْ مَا أَصَابَهُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ قَالَ: لَمَّا مَرَّ رَسُولُ الله بِالْحِجْرِ قَالَ: (لَا تَدْخُلُوا مَسَاكِنَ الَّذِينَ ظَلَمُوا أَنْفُسَهُمْ أَنْ يُصِيبَكُمْ مَا أَصَابَهُمْ إِلَّا أَنْ تَكُونُوا بَاكِينَ) ثُمَّ قَنَّعَ رَسُولُ الله رَأْسَهُ وَأَسْرَعَ السَّيْرَ حَتَّى أَجَازَ الْوَادِي.

955- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) ji eshabê xwe re got: (Yanî wextê gihîştine Hîcr a ku welatê qewmê Semûd e.) "Hûn bes bi girî di ber van kesê têne ezab dayin re derbas bibin. Heger hûn negrîn, di ber wan re derbas nebin. Da ku tiştê hatiye serê wan neyê serê we jî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di senedekê de: Pêxemberê Xwedê (s.) wextê di ber Hîcrê re derbas bû, got: "Hûn bes bi girî bikevine cihê wan kesê ku sîtem li xwe kirine. Da ku tiştê hatiye serê wan neyê serê we jî." Paşê Pêxemberê Xwedê (s.) serê xwe nixûmand û bi lez meşiya heta ji wê newalê derbas bû.

# كِتَابُ الآدَابِ السَّفَرِ
# KITÊBA ADABÊ RÊWÎTIYÊ

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ الْخُرُوجِ يَوْمَ الْخَمِيسِ
## MUSTEHEBBÛNA DERKETINA RÊWÎTIYÊ DI ROJA PÊNŞEMÊ DE

٩٥٦- عَنْ كَعْبِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ خَرَجَ فِي غَزْوَةِ تَبُوكَ يَوْمَ الْخَمِيسِ، وَكَانَ يُحِبُّ أَنْ يَخْرُجَ يَوْمَ الْخَمِيسِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ فِي (الصَّحِيحَيْنِ): لَقَلَّمَا كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَخْرُجُ إِلَّا فِي يَوْمِ الْخَمِيسِ.

956- Ji Ke'bê kurê Malik (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) roja pêncşemê derkete herba Tebûkê û hez dikir ku roja pêncşemê derkeve rêwîtiyê. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di seneda Sehîheyna (Sehîha Buxarî û Sehîha Muslim) de: Pêxemberê Xwedê (s.) ji xeynê roja pêncşemê pir hindik derdikete seferê.

٩٥٧-وَعَنْ صَخْرِ بْنِ وَدَاعَةَ الْغَامِدِيِّ الصَّحَابِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (اللَّهُمَّ بَارِكْ لِأُمَّتِي فِي بُكُورِهَا) وَكَانَ إِذَا بَعَثَ سَرِيَّةً أَوْ جَيْشاً بَعَثَهُمْ مِنْ أَوَّلِ النَّهَارِ، وَكَانَ صَخْرٌ تَاجِراً، فَكَانَ يَبْعَثُ تِجَارَتَهُ أَوَّلَ النَّهَارِ، فَأَثْرَى وَكَثُرَ مَالُهُ. رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

957- Ji Sexrê kurê Weda'eyê Xamidiyê sehabî (r.) hatiye rîwayetkirin

ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xweda! Tu şeveqa sibehê ji ummeta min re pîroz û xwedanbereket bikî." Pêxemberê Xwedê (s.) wextê cerd û yan jî leşker bişanda herbê di destpêka rojê de dişand. Sexr jî tucar bû, ewî malê xwe yê ticaretê di destpêka rojê de dişand. Vêca ew bi sedem vêya dewlemend bû û malê wî pir bû. *Ebû Dawûd Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e*

## بَابُ إِسْتِحْبَاب طَلَب الرِّفْقَة

## MUSTEHEBBÛNA LÊGERÎNA HEVALÊ RÊWÎTIYÊ

٩٥٨- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَوْ أَنَّ النَّاسَ يَعْلَمُونَ مِنَ الْوَحْدَةِ مَا أَعْلَمُ مَا سَارَ رَاكِبٌ بِلَيْلٍ وَحْدَهُ). رَوَاهُ البُخَارِي.

958- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Heger însanan xeteniya tenêtiya rêwîtiyê qasî min zanîba tu siwarî bi şevê tenê rêwîtî nedikir." *Buxari rîwayet kiriye.*

٩٥٩- وَعَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ، عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (الرَّاكِبُ شَيْطَانٌ، وَالرَّاكِبَانِ شَيْطَانَانِ، وَالثَّلاثَةُ رَكْبٌ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود. وَالتِّرْمِذِي وَالنَّسَائِي بِأَسَانِيدَ صَحِيحَةٍ، وَقَالَ التِّرْمِذِيُّ: حَدِيثٌ حَسَن.

959- Ji 'Emrê kurê Şu'eyb, ewî ji bav, ewî jî ji bapîr (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Siwarek şeytan e, du siwar du şeytan in û sê siwar karwan e." *Ebû Dawûd, Tirmizî û Nesaî bi senedên sehîh rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

٩٦٠- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ وأَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَا: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا خَرَجَ ثَلَاثَةٌ فِي سَفَرٍ فَلْيُؤَمِّرُوا أَحَدَهُمْ) رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

960- Ji Ebû Se'îd û ji Ebû Hureyre (r.), gotin: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê sê mirov derketine rêwîtiyê bila di nav xwe de yekî bikin mîrê xwe." *Ebû Dawûd bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

٩٦١- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (خَيْرُ الصَّحَابَةِ أَرْبَعَةٌ، وَخَيْرُ السَّرَايَا

أَرْبَعُمِائَةٍ، وَخَيْرُ الجُيُوشِ أَرْبَعَةُ آلَافٍ، وَلَنْ يُغْلَبَ اثْنَا عَشَرَ أَلْفاً مِنْ قِلَّةٍ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

961- Ji kurê 'Ebbas (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Qenctirînê hevalan çar in, qenctirînê cerdê leşkerî çar sed in û qenctirînê leşkerê dê biçine herbê çar hezar in. Duwazdeh hezar leşker, nayê mexlûbkirin bi sedem hindikbûnê." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ آدَابِ السَّيْرِ وَالنُّزُولِ

## ADABÊ RÊWÎTIYÊ, BIRÊVEÇÛYINÊ Û PEYABÛNA MENZÎLÊ

٩٦٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا سَافَرْتُمْ فِي الْخِصْبِ فَأَعْطُوا الإِبِلَ حَظَّهَا مِنَ الأَرْضِ، وَإِذَا سَافَرْتُمْ فِي الْجَدْبِ، فَأَسْرِعُوا عَلَيْهَا السَّيْرَ، وَبَادِرُوا بِهَا نِقْيَهَا، وَإِذَا عَرَّسْتُمْ، فَاجتَنِبُو الطَّرِيقَ، فَإِنَّهَا طُرُقُ الدَّوَابِّ وَمَأْوَى الْهَوَامِّ بِاللَّيْلِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

962- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê we di cihê hêşînayî de rêwîtî kir hûn heqê hêstiran ji erdê bidinê. Wextê we di erdê bêçêre de rêwîtî kir hûn hêstira bi lez bajon heta hûn bigihêjine qonaxa xwe. Û wextê we bi şev warê xwe danî xwe ji rê biparêzin, derkevine qeraxê rê. Lewra rê bi şev rêya heywanan û stargeha bihokan e." *Muslim rîwayet kiriye.*

٩٦٣- وَعَنْ أَبِي قَتَادَةَ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (إِذَا كَانَ فِي سَفَرٍ، فَعَرَّسَ بِلَيْلٍ اضْطَجَعَ عَلَى يَمِينِهِ، وَإِذَا عَرَّسَ قُبَيْلَ الصُّبْحِ نَصَبَ ذِرَاعَهُ، وَوَضَعَ رَأْسَهُ عَلَى كَفِّهِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَقَالَ الْعُلَمَاءُ: إِنَّمَا نَصَبَ ذِرَاعَهُ لِئَلَّا يَسْتَغْرِقَ فِي النَّوْمِ فَتفوتَ صَلَاةُ الصُّبْحِ وَقْتَهَا أَوْ مِنْ أَوَّلِ وَقْتِهَا.

963- Ji Ebû Qetade (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wextê rêwîtî bikira û vêca bi şev li cihekî war daniya xwe li ser kêleka xwe ya rastê dirêj dikir. Û wextê berbanga sibehê war daniya zenda xwe radikir û serê xwe datanî ser kefa destê xwe. *Muslim riwayet kiriye.*

'Alima gotin: Razana Pêxember (s.) di berbanga sibehê de bi vî awayî, ji ber wê bû ku ew nekevin xewê ku nimêja sibehê ji wextê xwe û yan jî ji

ewilê wextê xwe dernekeve.

٩٦٤- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (عَلَيْكُمْ بِالدُّلْجَةِ، فَإِنَّ الأَرْضَ تُطْوَى بِاللَّيْلِ).

رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

964- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn bi şev rêwîtiyê bikin. Lewra bi şevê di erdê de zû tê çûyin." *Ebû Dawûd bi senedeke rind rîwayet kiriye.*

٩٦٥- وَعَنْ أَبِي ثَعْلَبَةَ الْخُشَنِيِّ ﷺ قَالَ: كَانَ النَّاسُ إِذَا نَزَلُوا مَنْزِلاً تَفَرَّقُوا فِي الشِّعَابِ وَالأَوْدِيَةِ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ تَفَرُّقَكُمْ فِي هَذِهِ الشِّعَابِ وَالأَوْدِيَةِ، إِنَّمَا ذلِكُمْ مِنَ الشَّيْطَانِ) فَلَمْ يَنْزِلُوا بَعْدَ ذَلِكَ مَنْزِلاً إِلَّا انْضَمَّ بَعْضُهُمْ إِلَى بَعْضٍ. رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

965- Ji Ebû Se'lebeyê Xuşenî (r.), got: Însan wextê li cîhekî war datanîn, li şiverê û li geliya belav dibûn. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bêguman belavbûna we ya di van şiverê û geliyan de ji karê şeytan e." Vêca piştî vê gotinê wextê wana li cihekî war datanîn miheqeq ji hevdu belav nedibûn. *Ebû Dawûd bi senedek rind rîwayet kiriye.*

٩٦٦- وَعَنْ سَهْلِ بْنِ عَمْرٍ - وَقِيلَ: سَهْلِ بْنِ الرَّبِيعِ بْنِ عَمْرٍ وَالأَنْصَارِيِّ الْمَعْرُوفِ بِابْنِ الْحَنْظَلِيَّةِ، وَهُوَ مِنْ أَهْلِ بَيْعَةِ الرِّضْوَانِ ﷺ قَالَ: مَرَّ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِبَعِيرٍ قَدْ لَحِقَ ظَهْرُهُ بِبَطْنِهِ، فَقَالَ: (اتَّقُوا اللَّهَ فِي هَذِهِ الْبَهَائِمِ الْمُعْجَمَةِ، فَارْكَبُوهَا صَالِحَةً، وَكُلُوهَا صَالِحَةً).

رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

966- Ji Sehlê kurê 'Emr, yan jî Sehlê kurê Rebî'ê kurê 'Emr yê Ensarî yê ku navdar e bi Îbnul-Henzelî û ew ji ehlê Bî'atur-Ridwanê ye (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) li ber hêstireke ku pişta wê bi zikê wê ve zeliqî bû re derbas bû û got: "Hûn di derbarê van heywanan de ji Xwedê bitirsin. Wextê bi hêz û quwet bin hûn li wan siwar bin û wextê qelew bin wan bixwin. (Wekî din eziyetê nedine wan)." *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

٩٦٧- وَعَنْ أَبِي جَعْفَرٍ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ جَعْفَرٍ ﷺ قَالَ: أَرْدَفَنِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ ذَاتَ يَوْمٍ

خَلْفَهُ، وَأَسَرَّ إِلَيَّ حَدِيثاً لَا أُحَدِّث بِهِ أَحَداً مِنَ النَّاسِ، وَكَانَ أَحَبَّ مَا اسْتَتَرَ بِهِ رَسُولُ اللهِ لِحَاجَتِهِ هَدَفٌ أَوْ حَائِشُ نَخْلٍ. يَعْنِي: حَائِطَ نَخْلٍ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ هَكَذَا مُخْتَصَراً.

وَزَادَ فِيهِ الْبَرْقَانِي، بِإِسْنَادِ مُسْلِمٍ بَعْدَ قَوْلِهِ: حَائِشُ نَخْلٍ: فَدَخَلَ حَائِطاً لِرَجُلٍ مِنَ الأَنْصَارِ، فَإِذَا فِيهِ جَمَلٌ، فَلَمَّا رَأَى رَسُولَ اللهِ ﷺ جَرْجَرَ وَذَرَفَتْ عَيْنَاهُ، فَأَتَاهُ النَّبِيُّ، فَمَسَحَ سَرَاتَهُ- أَيْ: سَنَامَهُ، وَذِفْرَاهُ فَسَكَنَ، فَقَالَ: (مَنْ رَبُّ هَذَا الْجَمَلِ، لِمَنْ هَذَا الجَمَلُ؟) فَجَاءَ فَتىً مِنَ الأَنْصَارِ فَقَالَ: هَذَا لِي يَا رَسُولَ اللهِ: فَقَالَ: (أَفَلَا تَتَّقِي اللَّهَ فِي هَذِهِ الْبَهِيمَةِ الَّتِي مَلَّكَكَ اللهُ إِيَّاهَا؟ فَإِنَّهُ يَشْكُو إِلَيَّ أَنَّكَ تُجِيعُهُ وَتُدْئِبُهُ. رَوَاهُ أَبُو دَاوود كَرِوَايَةِ الْبَرْقَانِيِّ.

967- Ji Ebû Ca‘fer ‘Ebdullahê kurê Ce‘fer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) rojekê ez li paş xwe siwar kirim, ji min re bi dizî ve gotineke ku ez ji tu kesî re nebêjim got. Pêxemberê Xwedê (s.) ji bo destavê pir hez dikir ku girek û yan jî dîwarê baxê xurman ewî bistirîne.” *Muslim bi kurtî riwayet kiriye.*

Berqanî bi isnada Muslim piştî gotina wî (dîwarê baxê xurman) ev jî zêde kiriye: Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) kete baxê mirovekî Ensarî, lê nihêrî ku hêştirek tê de ye. Wextê hêştirê Pêxemberê Xwedê (s.) dît nalînî kir û her du çavê wê hêstir kir. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) hate bal wê û hawîd û pişta guhê wê mist da û li ser vê yekê hêstirê jî dengê xwe birî. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Xwediyê vê hêştirê kî ye, ev hêştir ya kê ye?” Xortekî Ensarî hat û got: Ya Pêxemberê Xwedê, ev hêştir ya min e. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Qey tu di derbarê vê heywana ku Xwedê xistiye mulkê te de ji Xwedê natirsî? Bêguman ev heywana gazindê te li min dike ku tu ewê birçî dihêlî û tu wê pir diwestînî.” *Ebû Dawûd jî wekî seneda Berqanî riwayet kiriye.*

٩٦٨- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: كُنَّا إِذَا نَزَلْنَا مَنْزِلاً، لَا نُسَبِّحُ حَتَّى نَحُلَّ الرِّحَالَ. رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

968- Ji Enes (r.), got: Wextê me li cihekî warê xwe daniya heta me barê heywanê xwe venekira me nimêja nafile nedikir. *Ebû Dawûd bi senedeke rind riwayet kiriye*

## بَابُ إِعَانَةِ الرَّفِيقِ

## ARÎKARIYA HEVALÊ RÊ

فِي الْبَابِ أَحَادِيث كَثِيرَة تَقَدَمَتْ كَحَدِيثِ: (وَاللهُ فِي عَوْنِ الْعَبْدِ مَا كَانَ الْعَبْدُ فِي

عَوْنَ أَخِيهِ) وَحَدِيثِ (كُلُّ مَعْرُوفٍ صَدَقَة) وَأَشْبَاهِهِمَا.

Di vî babî de gelek hedîs derbas bûne, wekî hedîsa: "Hindî bende di arîkariya birayê xwe de be, Xweda jî di arîkariya wî de ye." Û wekî hedîsa: Her me'rûf (qencî) sedeqe ye." Û her wekî yên mîna van her duyana.

٩٦٩- وَعَنْ أَبِي سَعِيدِ الْخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: بَيْنَمَا نَحْنُ فِي سَفَرٍ إِذْ جَاءَ رَجُلٌ عَلَى رَاحِلَةٍ لَهُ، فَجَعَلَ يَصْرِفُ بَصَرَهُ يَمِيناً وَشِمَالاً، فَقَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (مَنْ كَانَ مَعَهُ فَضْلُ ظَهْرٍ، فَلْيَعُدْ بِهِ عَلَى مَنْ لَا ظَهْرَ لَهُ، وَمَنْ كَانَ لَهُ فَضْلُ زَادٍ، فَلْيَعُدْ بِهِ عَلَى مَن لَا زَادَ لَهُ) فَذَكَرَ مِنْ أَصْنَافِ الْمَالِ مَا ذَكَرَهُ، حَتَّى رَأَيْنَا، أَنَّهُ لَا حَقَّ لأَحَدٍ مِنَّا فِي فَضْلٍ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

969- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Wextê em di rêwîtiyekê de bûn mirovek li ser hêstira xwe siwar hat û çavê xwe li aliyê rastê û yê çepê gerand. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Kesê ku li cem merkebeke zêde hebe bila bide yê ku merkeba wî tune, kesê ku li cem xwarina zêde hebe bila bide yê ku xwarina wî tune..." Û Pêxemberê Xwedê (s.) heta ku karibû cûreyê mal zikir kir, heta me zanî ku ji me heqê tu kesî di zêdeya de tune. *Muslim rîwayet kiriye.*

٩٧٠- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ عَنْ رسولِ اللهِ ﷺ أَنَّهُ أَرَادَ أَنْ يَغْزُوَ، فَقَالَ: (يَا مَعْشَرَ الْمُهَاجِرِينَ وَالأَنْصَارِ إِنَّ مِنْ إِخْوَانِكُمْ قَوْماً، لَيْسَ لَهُمْ مَالٌ، وَلَا عَشِيرَةٌ، فَلْيَضُمَّ أَحَدُكُمْ إِلَيْهِ الرَّجُلَيْنِ، أَوِ الثَّلَاثَةَ) فَمَا لأَحَدِنَا مِنْ ظَهْرٍ يَحْمِلُه إِلَّا عُقْبَةٌ كَعُقْبَةِ أَحَدِهِمْ: قَالَ: فَضَمَمْتُ إِلَيَّ اثْنَيْنِ أَوْ ثَلَاثَةً وَمَا لِي إِلَّا عُقْبَةٌ كَعُقْبَةِ أَحَدِهِمْ مِنْ جَمَلِي. رَوَاهُ أَبُو دَاوود.

970- Ji Cabir (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) hatiye rîwayetkirin ku wextê ewî (s.) bixwesta herbê bike digot: "Gelî koma Muhacir û Ensaran! Bêguman ji birayên we hinek hene, ne malê wan û ne jî êla wan heye. Vêca bila her yek ji we du mirovan û yan jî sê mirovan hilde bal xwe." Rawî dibêje: Bêguman kesê ji me hêstira wî hebû jî bi dor lê siwar dibû. Li ser gotina Pêxemberê Xwedê (s.) min du û yan jî sê mirov hilda bal xwe û hêstireka min hebû, em bi dor lê siwar dibûn.

٩٧١- وَعَنْهُ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللهِ ﷺ يَتَخَلَّفُ فِي الْمَسِيرِ، فَيُزْجِي الضَّعِيفَ وَيُرْدِفُ وَيَدْعُو لَهُ. رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

971- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) di rêwîtiyê de şûnde dima, mirovên ze'îf li hêstiran siwar dikir, rêve dibir û ji wî re jî dua dikir.
*Ebû Dawûd bi senedeke rind rîwayet kiriye.*

## بَابُ مَا يَقُولُهُ إِذَا رَكِبَ الدَّابَةَ لِلسَّفَرِ

## GOTINA RÊWÎ WEXTÊ LI DEWARA XWE SIWAR DIBE JI BO RÊWÎTIYÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَجَعَلَ لَكُمْ مِنَ الْفُلْكِ وَالأَنْعَامِ مَا تَرْكَبُونَ ۞ لِتَسْتَوُوا عَلَى ظُهُورِهِ ثُمَّ تَذْكُرُوا نِعْمَةَ رَبِّكُمْ إِذَا اسْتَوَيْتُمْ عَلَيْهِ وَتَقُولُوا سُبْحَانَ الَّذِى سَخَّرَ لَنَا هَذَا وَمَا كُنَّا لَهُ مُقْرِنِينَ ۞ وَإِنَّا إِلَى رَبِّنَا لَمُنْقَلِبُونَ﴾

"(Xwedê te'ala) gemî û terşê ku hûn lê siwar bin afirandine. Da ku hûn li pişta wan siwar bin, paşê da ku hûn her wextê li pişta wan siwar bûn nîmetê Xwedê bînin bîra xwe û bêjin: Pak û paqijiya ji hemû kêmasiyan ji Xwedê re ye, ewê ku ev ji bo me sernerm kiriye û ku em bi xwe şiyandarê vê nebûn. Û dê em li Xwedayê xwe bizivirin."[1]

٩٧٢- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللهِ ﷺ كَانَ إِذَا اسْتَوَى عَلَى بَعِيرِهِ خَارِجاً إِلَى سَفَرٍ، كَبَّرَ ثَلاثاً، ثُمَّ قَالَ: (سُبْحَانَ الَّذِي سَخَّرَ لَنَا هَذَا وَمَا كُنَّا لَهُ مُقْرِنِينَ، وَإِنَّا إِلَى رَبِّنَا لَمُنْقَلِبُونَ، اللّهُمَّ إِنَّا نَسْأَلُكَ فِي سَفَرِنَا هَذَا الْبِرَّ وَالتَّقْوَى، وَمِنَ الْعَمَلِ مَا تَرْضَى، اللَّهُمَّ هَوِّنْ عَلَيْنَا سَفَرَنَا هَذَا، وَاطْوِ عَنَّا بُعْدَهُ، اللَّهُمَّ أَنْتَ الصَّاحِبُ فِي السَّفَرِ، وَالْخَلِيفَةُ فِي الأَهْلِ، اللّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنْ وَعْثَاءِ السَّفَرِ، وَكَآبَةِ الْمَنظَرِ، وَسُوءِ الْمُنْقَلَبِ فِي الْمَالِ وَالأَهْلِ وَالْوَلَدِ) وَإِذَا رَجَعَ قَالَهُنَّ وَزَادَ فِيهِنَّ: (آيِبُونَ تَائِبُونَ عَابِدُونَ لِرَبِّنَا حَامِدُونَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

972- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wextê li hêstira xwe siwar dibû ku here rêwîtiyê sê caran tekbîr dianî û

---
1 Zuxruf, 43/12-14.

paşê jî digot: "Pak û paqijiya ji hemû kêmasiyan ji Xwedê re ye, ewê ku eva ji bo me sernerm kiriye û ku em bi xwe şiyandarê vê nebûn. Û dê em bi bal Xwedayê xwe ve bizivirin. Xwedayo! Em di vê rêwîtiya me ya hanê de qencî, teqwa û kiryarê ku tu pê qayîl bî ji te dixwazin. Xwedayo! Tu evê rêwîtiya me ji me re hêsan bikî û dûratiya wê jî bitewînî (nêzîk bikî). Xwedayo! Her tu yî heval di rêwîtiyê de û parêzger di zar û zêçan de. Xwedayo! Ez xwe ji tengasiyê rêwîtiyê, ji xemê bergeha û ji vegerandina xirab bal mal û zar û zêçan ve diparêzime te." Wextê vedigeriya jî ev dua dixwend, lê ev jî lê zêde dikir: "Em ji rêwîtiyê, tobedar, îbadetker û ji rebbê xwe re hemdker zivirîn." *Muslim riwayet kiriye.*

٩٧٣- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ سَرْجِسَ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللهِ ﷺ إِذَا سَافَرَ يَتَعَوَّذُ مِنْ وَعْثَاءِ السَّفَرِ، وَكَآبَةِ الْمُنْقَلَبِ، وَالْحَوْرِ بَعْدَ الكَوْنِ، وَدَعْوَةِ الْمَظْلُومِ، وَسُوءِ الْمَنْظَرِ فِي الأَهْلِ وَالْمَالِ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

973- Ji 'Ebdullahê kurê Sercis (r.), got: Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) derketa rêwîtiyê; ji tengasiya rêwîtiyê, ji xemê vegeranê, ji xwarbûna piştî rastbûnê, ji nifirê sîtembaran û ji xirabiya bergeha di zar û zêç û malî de xwe dispart. *Muslim riwayet kiriye.*

٩٧٤- وَعَنْ عَلِيِّ بْنِ رَبِيعَةَ قَالَ: شَهِدتُ عَلِيَّ بْنِ أَبِي طَالِبٍ ﷺ أُتِيَ بِدَابَّةٍ لِيَرْكَبَهَا، فَلَمَّا وَضَعَ رِجْلَهُ فِي الرِّكَابِ قَالَ: بِسْمِ اللَّهِ، فَلَمَّا اسْتَوَى عَلَى ظَهْرِهَا قَالَ: الْحَمْدُ لِلَّهِ الَّذِي سَخَّرَ لَنَا هَذَا، وَمَا كُنَّا لَهُ مُقْرِنِينَ، وَإِنَّا إِلَى رَبِّنَا لَمُنْقَلِبُونَ ثُمَّ قَالَ: الْحَمْدُ لِلَّهِ، ثَلاثَ مَرَّاتٍ، ثُمَّ قَالَ: اللَّهُ أَكْبَرُ ثَلاثَ مَرَّاتٍ، ثُمَّ قَالَ: سُبْحَانَكَ إِنِّي ظَلَمْتُ نَفْسِي فَاغْفِرْ لِي فَإِنَّهُ لَا يَغْفِرُ الذُّنُوبَ إِلَّا أَنْتَ، ثُمَّ ضَحِكَ، فَقِيلَ: يَا أَمِيرَ الْمُؤْمِنِينَ مِنْ أَيِّ شَيْءٍ ضَحِكْتَ؟ قَالَ: رَأَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ فَعَلَ كَمَا فَعَلْتُ، ثُمَّ ضَحِكَ، فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ مِنْ أَيِّ شَيْءٍ ضَحِكْتَ؟ قَالَ: (إِنَّ رَبَّكَ يَعْجَبُ مِنْ عَبْدِهِ إِذَا قَالَ: اغْفِرْ لِي ذُنُوبِي، يَعْلَمُ أَنَّهُ لَا يَغْفِرُ الذُّنُوبَ غَيْرِي). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

974- Ji 'Eliyê kurê Rebî'e (r.), got: Min bi çavê xwe dît ku ji Hz. 'Eliyê

kurê Ebû Talib (r.) re ji bo siwarbûna wî heywanek hate anîn, wextê ewî piyê xwe danî zengûyê got: "Bîsmîllah." Û wextê li pişta wê siwar bû got: "Hemd ji Xwedê re ye, ewê ku ev ji bo me sernerm kiriye û ku em bi xwe şiyandarê vê nebûn. Û bêguman emê bizivirine cem Xwedayê xwe." Paşê jî sê caran got: "Elhamdu lîllah." Piştre sê caran jî: "Ellahe ekber," got. Û paşê jî got: "Tu ji hemû kêmasiyan pak û paqij î. Bêguman min zilm li nefsa xwe kiriye, vêca tu min bibexşînî. Lewra ji xeynê te tu kes gunehan nikare bibexşîne." Piştî vê gotinê keniya. Hate gotin: Ya Mîrê Mu'minan! Tu ji bo çi keniyayî? Ewî (r.) jî got: "Min Pêxember (s.) dît, ewî jî wekî vê kirina min kir û paşê jî keniya. Vêca min jê re got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu ji bo çi keniyayî? Ewî (s.) got: Bêguman Rebbê te yê ku ji hemû kêmasiyan pak û paqij e, pir kêfxweş dibe ji wî bendeyê ku dizane ji xeynê Xwedê tu kes gunehan nabexişîne û wiha dibêje: Xwedayo! Tu gunehê min bibexşînî." *Ebû Dawûd û Tirmizî riwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ تَكْبِيرِ الْمُسَافِرِ إِذَا صَعَدَ الثَّنَايَا وَتَسْبِيحهُ إِذَا هَبَطَ الأَوْدِيَةَ

## TEKBÎRANÎNA RÊWIYÎ DI HEVRAZ DE Û TESBÎHANÎNA WÎ DI BERJÊR DE

٩٧٥- عَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: كُنَّا إِذَا صَعِدْنَا كَبَّرْنَا، وَإِذَا نَزَلْنَا سَبَّحْنَا. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

975- Ji Cabir (r.), got: Em wextê berjor bana me tekbîr dida û wextê berjêr bana me tesbîh dida. *Buxarî riwayet kiriye.*

٩٧٦- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ وَجُيُوشُهُ إِذَا عَلَوُا الثَّنَايَا كَبَّرُوا، وَإِذَا هَبَطُوا سَبَّحوا. رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

976- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxember (s.) û leşkerê wî wextê derketana hevrazan tekbîr dianîn û wextê berjêr bibûyana jî tesbîh dianîn. *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh riwayet kiriye.*

٩٧٧- وَعَنْهُ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ إِذَا قَفَلَ مِنَ الحَجِّ أَوِ الْعُمْرَةِ كُلَّمَا أَوْفَى عَلَى ثَنِيَّةٍ أَوْ فَدْفَدٍ كَبَّرَ ثَلَاثاً، ثُمَّ قَالَ: (لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَحْدَهُ لَا شَرِيكَ لَهُ، لَهُ الْمُلْكُ وَلَهُ الْحَمْدُ، وَهُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ، آيِبُونَ تَائِبُونَ عَابِدُونَ سَاجِدُونَ لِرَبِّنَا حَامِدُونَ، صَدَقَ الله وَعْدَهُ،

وَنَصَرَ عَبْدَهُ، وَهَزَمَ الأَحْزَابَ وَحْدَه). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِم: (إِذَا قَفَلَ مِنَ الْجُيوشِ أَوِ السَّرَايَا أَوِ الْحَجِّ أَوِ الْعُمْرَةِ).

977- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wextê ji hecê û yan jî ji 'umrê vedigeriya, çiqasî li ser cîhekî bilind û yan jî erdekî xapûr re derbas bûya sê caran tekbîr dianî û paşê jî digot: "Ji xeynê Xwedê tu îlah tune, ew yek e, hevbeşê wî tune, mulk û hemd her yê wî ne û ew li ser her tiştî şiyandar e. Em ji rêwîtiyê tobedar, îbadetker, secdeker û ji rebbê xwe re hemdker zivirîn. Xwedê soza xwe pêk anî, arîkariya bendeyê xwe kir û bi tenê gelek artêş şerpeze kir." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

Di seneda Muslim de: Wextê ji artêşa yan ji cerda û yan ji hecê û yan jî ji 'umrê vedigeriyan.

٩٧٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَجُلاً قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، إِنِّي أُرِيدُ أَنْ أُسَافِرَ فَأَوْصِنِي، قَالَ: (عَلَيْكَ بِتَقْوَى اللَّهِ، وَالتَّكْبِيرِ عَلَى كُلِّ شَرَفٍ) فَلَمَّا وَلَّى الرَّجُلَ، قَالَ: (اللَّهُمَّ اطْوِ لَهُ الْبُعْدَ، وَهَوِّنْ عَلَيْهِ السَّفَرَ) رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

978- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî got: Ya Pêxemberê Xwedê! Niyeta min heye ku ez derkevim rêwîtiyê, vêca tu jî şîreta li min bike. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu ji Xwedê bitirse, wextê tu derketî ser cihê bilind tekbîr bîne." Wextê ev mirov zivirî û çû, Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Xweda! Tu dûratiyê jê re nêzîk bikî û rêwîtiya wî jî jê re hêsan bikî." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

٩٧٩- وَعَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: كُنَّا مَعَ النَّبِيِّ ﷺ فِي سَفَرٍ، فَكُنَّا إِذَا أَشْرَفْنَا عَلَى وَادٍ هَلَّلْنَا وَكَبَّرْنَا وَارْتَفَعَتْ أَصْوَاتُنَا، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (يَا أَيُّهَا النَّاس ارْبَعُوا عَلَى أَنْفُسِكُمْ فَإِنَّكُمْ لاَ تَدْعُونَ أَصَمَّ وَلاَ غَائِباً، إِنَّهُ مَعَكُمْ سَمِيعٌ قَرِيبٌ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

979- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.), got: Em di rêwîtiyekê de digel Pêxemberê Xwedê (s.) bûn. Wextê em ji newalekê hevraz dibûn me tehlîl û tekbîr dianî, lê dengê me bilind dibû. Vêca Pêxember (s.) got: "Gelî mirovan! Dilê we bila bi we bişewite. Lewra hûn gazî yekî kerr û winda nakin. Bêguman Xweda herdem digel we ye û ew sehker e nêzîk e." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ الدُّعَاءِ فِي السَّفَرِ

## MUSTEHEBBÛNA DUAKIRINA DI RÊWÎTIYÊ DE

٩٨٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (ثَلَاثُ دَعَوَاتٍ مُسْتَجَابَاتٌ لَا شَكَّ فِيهِنَّ: دَعْوَةُ الْمَظْلُومِ، وَدَعْوَةُ الْمُسَافِرِ، وَدَعْوَةُ الْوَالِدِ عَلَى وَلَدِهِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ، وَلَيْسَ فِي رِوَايَةِ أَبِي دَاوود (عَلَى وَلَدِهِ).

980- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Sê cûre dua bêşik têne qebûl kirin: Duayê sîtembarî, duayê mêvan û yek jî nifir/beduayê bav ji kur re." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

Di seneda Ebû Dawûd de lefzê "ji kur re" tune.

## بَابُ مَا يَدْعُو إِذَا خَافَ

## DUAYA LI NIK TIRSÊ

٩٨١- عَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ إِذَا خَافَ قَوْماً قَالَ: (اللَّهُمَّ إِنَّا نَجْعَلُكَ فِي نُحُورِهِمْ، وَنَعُوذُ بِكَ مِنْ شُرُورِهِمْ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالنَّسَائِي بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

981- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wextê ji qewmekî bitirsiya wiha digot: "Xweda! Em parêzgeriya te dikin sîper di navbera xwe û neyaran de û em ji xirabiya wan xwe dispêrine te." *Ebû Dawûd û Nesaî bi senedeke sehîh rîwayet kirine.*

## بَابُ مَا يَقُولُ إِذَا نَزَلَ مَنْزِلاً

## GOTINA RÊWIYA LI NIK WARDANÎNÊ

٩٨٢- عَنْ خَوْلَةَ بِنْتِ حَكِيمٍ ﷺ قَالَتْ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ نَزَلَ مَنْزِلاً ثُمَّ قَالَ: أَعُوذُ بِكَلِمَاتِ اللَّهِ التَّامَّاتِ مِنْ شَرِّ مَا خَلَقَ، لَمْ يَضُرَّهُ شَيْءٌ حَتَّى يَرْتَحِلَ مِنْ مَنْزِلِهِ ذَلِكَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

982- Ji Xewleya keça Hekîm (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Kesê li cihekî qonax dayne û paşê jî: Ez xwe ji xirabiyê mexlûqan, dispêrime Xwedê, bêje, heta ji wê qonaxa xwe bar bike tu tiştek zerarê nadiyê." *Muslim rîwayet kiriye.*

٩٨٣- وَعَنِ اِبْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا سَافَرَ فَأَقْبَلَ اللَّيْلُ قَالَ: (يَا أَرْضُ، رَبِّي وَرَبُّكِ الله، أَعُوذُ بِالله مِنْ شَرِّكِ وَشَرِّ مَا فِيكِ، وَشَرِّ مَا خُلِقَ فِيكِ، وَشَرِّ مَا يَدِبُّ عَلَيْكِ، أَعُوذَ بِاللَّهِ مِنْ شَرِّ أَسَدٍ وَأَسْوَدٍ، وَمِنَ الْحَيَّةِ وَالْعَقْرَبِ، وَمِنْ سَاكِنِ الْبَلَدِ، وَمِنْ وَالِدٍ وَمَا وَلَدَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود.

983- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wextê derketa rêwîtiyê û ew rêwîtî rastî şevê bihata wiha digot: "Ey erd! Rebbê min û Rebbê te Xwedê ye. Ez xwe; ji xirabiya te, ji xirabiya tiştê di te de, ji xirabiya wan tiştên ku di te de hatine afirandin û ji xirabiya wan tiştên ku li ser te digerin dispêrime Xwedê. Û dîsa ez xwe dispêrime Xwedê ji xirabiya şêr û marê reş ê mezin, ji xirabiya mar û dûpişkan, ji xirabiya xelkê bajêr û ji xirabiya bav û zarokan." *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ تَعْجِيلِ الْمُسَافِرِ الرُّجُوعِ إِلَى أَهْلِهِ

## MUSTEHEBBÛNA LEZANDINA JI BO VEGERA NAVA ZAR Û ZÊÇAN

٩٨٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (السَّفَرُ قِطْعَةٌ مِنَ الْعَذَابِ، يَمْنَعُ أَحَدَكُمْ طَعَامَهُ، وَشَرَابَهُ وَنَوْمَهُ، فَإِذَا قَضَى أَحَدُكُمْ نَهْمَتَهُ مِنْ سَفَرِهِ، فَلْيُعَجِّلْ إِلَى أَهْلِهِ).

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

984- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Rêwîtî, qetek ji ezab e û we ji xwarin û vexwarin û razanê men' dike. Vêca wextê we mebest û meqseda xwe ya ji rêwîtiyê pêk anî lez bikin bal zar û zêçên xwe ve." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ الْقُدُومِ عَلَى أَهْلِهِ نَهَاراً

## MUSTEHEBBÛNA VEGERÎNA RÊWÎ BAL EHLÊ XWE VE BI ROJÊ

٩٨٥- عَنْ جَابِرٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (إِذَا أَطَالَ أَحَدُكُمُ الْغَيْبَةَ فَلَا يَطْرُقَنَّ أَهْلَهُ لَيْلاً).

 رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ نَهَى أَنْ يَطْرُقَ الرَّجُلُ أَهْلَهُ لَيْلاً

985- Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê yekî ji we rêwîtiya xwe dirêj kir bila bi şev neçe mala xwe."

Di senedekê de: Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) nehî kiriye ku mirov bi şev ji rêwîtiyê were mala xwe. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩٨٦- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لَا يَطْرُقُ أَهْلَهُ لَيْلاً، وَكَانَ يَأْتِيهِمْ غُدْوَةً أَوْ عَشِيَّةً. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

986- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji rêwîtiyê bi şev nedihate mala xwe. Destpêka rojê û yan jî di dûmahîka rojê de dihate mala xwe. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ مَا يَقُولُ إِذَا رَجَعَ

## GOTINA RÊWIYÊ LI NIK VEGERANÊ

٩٨٧- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: أَقْبَلْنَا مَعَ النَّبِيِّ ﷺ حَتَّى إِذَا كُنَّا بِظَهْرِ الْمَدِينَةِ قَالَ: (آيِبُونَ، تَائِبُونَ، عَابِدُونَ لِرَبِّنَا حَامِدُونَ فَلَمْ يَزَلْ يَقُولُ ذلِكَ حَتَّى قَدِمْنَا الْمَدِينَةَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

987- Ji Enes (r.), got: Em digel Pêxemberê Xwedê (s.) ji rêwîtiyekê zivirîn û wextê Medîneya Munewwere hate dîtin Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Em ji rêwîtiyê tobedar, îbadetker û ji Rebbê xwe re hemdker zivirîn." Pêxemberê Xwedê (s.) heta em hatine Medîneyê ev gotin her wisa got. *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ إِبْتِدَاء الْقَادِمِ بِالْمَسْجِدِ وَصَلَاتُهُ فِيهِ رَكْعَتَيْن

## MUSTEHEBBÛNA DESTPÊKIRINA KESÊ KU JI RÊWÎTIYÊ VEDIGERE DI MIZGEFTA LI SER RÊYA XWE DE DU REKAT NIMÊJ BIKE

٩٨٨- عَنْ كَعْبِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كانَ إِذَا قَدِمَ مِنْ سَفَرٍ بَدَأَ بِالْمَسْجِدِ فَرَكَعَ فِيهِ رَكْعَتَيْنِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

988- Ji Ke'bê kurê Malik (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wextê ji rêwîtiyê vedigeriya pêşiyê diçû mizgeftê û li wir du rekat nimêj dikir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ تَحْرِيمِ سَفَرِ الْمَرْأَةِ وَحْدَهَا

## HERAMBÛNA RÊWÎTIYA JINAN BI TENÊ

٩٨٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا يَحِلُّ لِإِمْرَأَةٍ تُؤْمِنُ بِاللهِ وَالْيَوْمِ الآخِرِ تُسَافِرُ مَسِيرَةَ يَوْمٍ وَلَيْلَةٍ إِلَّا مَعَ ذِي مَحْرَمٍ عَلَيْهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

989- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ji bo jina ku bawerî bi Xwedê û bi roja axîretê aniye helal nîne bi dûrahiya roj û şevekê bi tenê rêwîtiyê bike, ancax digel mahremekî xwe be ew ne tê de." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩٩٠- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: (لَا يَخْلُوَنَّ رَجُلٌ بِإِمْرَأَةٍ إِلَّا وَمَعَهَا ذُو مَحْرَمٍ، وَلَا تُسَافِرُ الْمَرْأَةُ إِلَّا مَعَ ذِي مَحْرَمٍ) فَقَالَ لَهُ رَجُلٌ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، إِنَّ إِمْرَأَتِي خَرَجَتْ حَاجَّةً، وَإِنِّي اكْتُتِبْتُ فِي غَزْوَةِ كَذَا وكَذَا؟ قَالَ: (انْطَلِقْ فَحُجَّ مَعَ إِمْرَأَتِكَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

990- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye, wiha gotiye: "Tu mêr bi jinekê re, wextê mehremekî wê digel wê nebe, bila tenê nemîne. Û bila tu jinik jî rêwîtiyê neke, ancax mehremekî wê digel wê be ew ne tê de. Vêca mirovekî ji Pêxemberê Xwedê (s.) re got: Ya Pêxemberê Xwedê! Jina min ji bo ku here hecê derket û ez jî ji bo filan filan herbê hatime bijartin û nivîsandin? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu here û digel jina xwe hecê bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

# كِتَابُ الْفَضَائِلِ
# KITÊBA XWENDIN Û FEZÎLETA

## بَابُ فَضْل قِرَاءَة الْقُرْآن
## XWENDINA QUR'ANÊ

٩٩١- عَنْ أَبِي أُمَامَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (اقْرَؤُوا القُرْآنَ فَإِنَّهُ يَأْتِي يَوْمَ الْقِيَامَةِ شَفِيعاً لِأَصْحَابِهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

991- Ji Ebû Umame (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Hûn Qur'anê bixwînin. Lewra Qur'an roja qiyametê bi mehdervanî tê cem xwediyên xwe." *Muslim rîwayet kiriye.*

٩٩٢- وعَنِ النَوَّاسِ بْنِ سَمعَانَ ﷺ قَالَ: سَمِعتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (يُؤْتَى يَوْمَ الْقِيَامَةِ بِالْقُرْآنِ وَأَهْلِهِ الَّذِينَ كَانُوا يَعْمَلُونَ بِهِ فِي الدُّنْيَا تَقدُمُهُ سُورَةُ الْبَقَرَةُ وَآلِ عِمْرَانَ، تُحَاجَّانِ عَنْ صَاحِبِهِمَا). رَوَاهُ مُسْلِم.

992- Ji Newwasê kurê Sem'an (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Di roja qiyametê de Qur'an û xwendevanê wê yê ku di dunyayê de pê 'emel kirine wê werin ku sûretê Beqere û sûretê Alî 'Îmran dikevine pêşiya wan. Û ew her du sûre jî li pêş xwediyê xwe bi hevdu re têkoşînê dikin." *Muslim rîwayet kiriye.*

٩٩٣- وَعَنْ عُثْمَانَ بْنِ عَفَّانَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (خَيْرُكُمْ مَنْ تَعَلَّمَ الْقُرْآنَ وَعَلَّمَهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

993- Ji Osmanê kurê 'Effan (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Qenctirînê we ew e; yê ku Qur'anê hîn dibe û dide hînkirin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

٩٩٤- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (الَّذِي يَقْرَأُ الْقُرْآنَ وَهُوَ مَاهِرٌ بِهِ مَعَ السَّفَرَةِ الْكِرَامِ الْبَرَرَةِ، وَالَّذِي يَقْرَأُ الْقُرْآنَ وَيَتَتَعْتَعُ فِيهِ وَهُوَ عَلَيْهِ شَاقٌّ لَهُ أَجْرَانِ) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

994- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ew kesê Qur'anê bi mahirî dixwîne, ew digel milyaketên qasid[1] yên mezin û parêzkar in. Û ew kesê Qur'anê bi lalikî û zehmetî dixwîne, ji wî re jî du xêr hene." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩٩٥- وَعَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَثَلُ الْمُؤْمِنِ الَّذِي يَقْرَأُ الْقُرْآنَ مَثَلُ الأَتْرُجَّةِ، رِيحهَا طَيِّبٌ، وَطَعْمُهَا طَيِّبٌ، وَمَثَلُ الْمُؤْمِنِ الَّذِي لَا يَقْرَأُ الْقُرْآنَ كَمَثَلِ التَّمْرَةِ، لَا رِيحَ لَهَا وَطَعْمُهَا حُلْوٌ، وَمَثَلُ الْمُنَافِقِ الَّذِي يَقْرَأُ الْقُرْآنَ كَمَثَلِ الرَّيحَانَةِ، رِيحهَا طَيِّبٌ وَطَعْمهَا مُرٌّ، وَمَثَلُ الْمُنَافِقِ الَّذِي لَا يَقْرَأُ الْقُرْآنَ كَمَثَلِ الْحَنْظَلَةِ: لَيْسَ لَهَا رِيحٌ وَطَعْمُهَا مُرٌّ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

995- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mesela mu'minê ku Qur'anê dixwîne wekî (utruccê) dara petêxê ye: Bêhna wê jî û çêja/tama wê jî xweş e. Û mesela mu'minê ku Qur'anê naxwîne wekî xurmê ye: Bêhna wê tune, lêbelê çêj/tama wê xweş e. Mesela munafiqê ku Qur'anê dixwîne wekî reyhanê ye: Bêhna wê xweş e, lêbelê tama wê tehl e. Û mesela munafiqê ku Qur'anê naxwîne wekî dara henzelê (zebeşê Ebû Cehil) ye: Bêhna wê tune û tama wê jî tehl e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩٩٦- وَعَنْ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ اللَّهَ يَرْفَعُ بِهَذَا الْكِتَابِ أَقْوَاماً وَيَضَعُ بِهِ آخَرِينَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1 **Milyaketên qasid**: Milyaketên ku qasidê wehyê ne, wehyê dadixin.

996- Ji ‘Emerê kurê Xettab (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: “Bêguman Xweda bi vê kitêbê (Qur‘anê) hinek qewma bilind dike û hinekan jî berjêr dike.” *Muslim rîwayet kiriye.*

٩٩٧- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَا حَسَدَ إِلَّا فِي اثْنَتَيْنِ: رَجُلٌ آتَاهُ اللَّهُ الْقُرْآنَ، فَهُوَ يَقُومُ بِهِ آنَاءَ اللَّيْلِ وَآنَاءَ النَّهَارِ، وَرَجُلٌ آتَاهُ اللَّهُ مَالاً، فَهُوَ يُنْفِقهُ آنَاءَ اللَّيْلِ وَآنَاءَ النَّهَارِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

997- Ji kure ‘Umer (r.), Pêxember (s.) gotiye: “Bes dexesiya du mirovan dirust e: Mirovekî ku Xwedê Qur’an kiribe para wî û vêca ew jî wê Qur’anê bi şev û roj dixwîne. Û yek jî ew mirovê ku Xwedê mal dabê û ew jî wî malî bi şev û roj di rêya Xwedê de dimezixîne.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩٩٨- وَعَنِ الْبَرَاءِ بْنِ عَازِبٍ قَالَ: كَانَ رَجُلٌ يَقرَأُ سُورَةَ الْكَهْفِ، وَعِنْدَهُ فَرَسٌ مَرْبُوطٌ بِشَطَنَيْنِ، فَتَغَشَّتْهُ سَحَابَةٌ فَجَعَلَتْ تَدْنُو، وَجَعَلَ فَرَسُه يَنْفِر مِنْهَا، فَلَمَّا أَصْبَحَ أَتَى النَّبِيَّ ﷺ فَذَكَرَ ذَلِكَ لَهُ، فَقَالَ: (تِلْكَ السَّكِينَةُ تَنَزَّلَتْ لِلْقُرْآنِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

998- Ji Bera Kurê ‘Azib (r.), got: Mirovekî sûretê Kehf dixwend û li cem wî jî hespê wî bi du werîsan girêdayî bû. Vêca ewrekî bi ser wî mirovî girt û nêzîkî wî bû ku hespê wî jî jê vediciniqî. Sibetirê ew mirov hate cem Pêxember (s.) û jê re ev yeka got. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: “Ew ewr sekînet û rehmet bû ji bo Qur’anê berjêr bûbû.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٩٩٩- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ قَرَأَ حَرْفاً مِنْ كِتَابِ اللَّهِ فَلَهُ حَسَنَةٌ، وَالْحَسَنَةُ بِعَشْرِ أَمْثَالِهَا لَا أَقُولُ: الم حَرفٌ، وَلَكِنْ: أَلِفٌ حَرْفٌ، وَلَامٌ حَرْفٌ، وَمِيمٌ حَرْفٌ) رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

999- Ji kurê Mes‘ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê ku ji kitêba Xwedê herfekê bixwîne, jê re xêrek heye û xêr jî bi deh carê xwe ne. Ez nabêjim ‘Elif, Lam, Mîm’ herfek e, belkî Elif herfek e û Lam herfek e û Mîm jî herfek e.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e û sehîh e.*

١٠٠٠- وعن ابن عبَّاس ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللّهِ ﷺ: (إِنَّ الَّذي لَيْسَ في جَوْفِهِ شَيْءٌ مِنَ القُرْآنِ كَالبَيْتِ الخَرِب). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ صَحِيحٌ.

1000- Ji kurê 'Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman ew kesê ku di hundirê wî de tiştek ji Qur'anê tune be, ew wekî mala xerabe ye." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e û sehîh e.*

١٠٠١- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرو بْنِ الْعَاصِ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (يُقَالُ لِصَاحِبِ القُرْآنِ: اِقْرَأْ وَارْتَقِ وَرَتِّلْ كَمَا كُنْتَ تُرَتِّلُ فِي الدُّنْيا، فَإِنَّ مَنْزِلَتَكَ عِنْدَ آخِرِ آيَةٍ تَقْرَؤُها).

رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرمِذِي، وقال: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1001- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Ji xwendevanê Quranê re tê gotin: Tu bixwîne, bilind bibe û bi tertîl û tecwîd bixwîne çawa ku te di dunyayê de jî wisa dixwend. Lewra qonaxa te li nik dûmahîka ayeta ku tu yê bixwînî ye." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e û sehîh e.*

## بَابُ الأَمْرِ بِتَعَهُّدِ الْقُرآن

## BI XWENDINÊ EMRÊ RAÇAVKIRINA QUR'ANÊ

١٠٠٢- عَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (تَعَاهَدُوا هَذَا الْقُرْآنَ فَوَالَّذِي نَفسُ مُحَمَّدٍ بِيَدِهِ، لَهُوَ أَشَدُّ تَفَلُّتاً مِنَ الإِبلِ فِي عُقُلِهَا). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1002- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn bi dom Qur'anê bi xwendinê raçav bikin. Ez bi wî Xwedayê ku nefsa Muhemmed bi destê wî ye sond dixwim ku jibîrkirina Qur'anê, ji deveha ku xwe ji bendê difilitîne revoktir e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٠٣- وعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (إِنَّمَا مَثَلُ صَاحِبِ القُرْآنِ كَمَثَلِ الإِبِلِ الْمُعَقَّلَةِ، إِنْ عَاهَدَ عَلَيْهَا أَمْسَكَهَا، وَإِنْ أَطْلَقَهَا ذَهَبَتْ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1003- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mesela xwendevanê Qur'anê wekî mesela deveha girêdayî ye: Heger wê raçav bike dê bisekine û eger wê berde dê here." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

# بَابُ إِسْتِحْبَاب تَحْسِين الصَّوْت بِالْقُرْآن
# MUSTEHEBBÛNA XWEŞKIRINA DENG BI QUR'ANÊ

١٠٠٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: مَا أَذِنَ الله لِشَيْءٍ مَا أَذِنَ لِنَبِيٍّ حَسَنِ الصَّوْتِ يَتَغَنَّى بِالْقُرْآنِ يَجْهَرُ بِهِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1004- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Xwedê guhê xwe nade (yanî; kêfxweş nabe ji) tu tiştekî bi qasî ku guhê xwe dide pêxemberê dengxweş ku Qur'anê bi texennî û dengdarî dixwîne." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٠٥- وَعَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ لَهُ: (لَقَدْ أُوتِيتَ مِزْمَاراً مِنْ مَزَامِيرِ آلِ دَاوُدَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِم: أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ لَهُ: لَوْ رَأَيْتَنِي وَأَنَا أَسْتَمِعُ لِقِرَاءَتِكَ الْبَارِحَةَ.

1005- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) ji wî re got: "Bêguman dengxweşî wekî dengxweşiya êla Dawûd ji te re jî hatiye dayin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di senedeke Muslim de: "Xwezî te şevê dî, wextê ku min li xwendina te guhdarî dikir te ez bidîtama."

١٠٠٦- وَعَنِ الْبَرَاءِ بْنِ عَازِبٍ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ قَرَأَ فِي الْعِشَاءِ بِالتِّينِ وَالزَّيْتُونِ فَمَا سَمِعْتُ أَحَداً أَحْسَنَ صَوْتاً مِنْهُ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1006- Ji Berayê kurê 'Azib (r.), got: Min ji Pêxember (s.) seh kir ku di nimêja 'eşayê de sûretê Tîn û yê Zeytûnê xwend û min ji wî dengxweştir tu kes seh nekiribû." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٠٧- وَعَنْ أَبِي لُبَابَةَ بَشِيرِ بْنِ عَبْدِ الْمُنْذِرِ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (مَنْ لَمْ يَتَغَنَّ بِالْقُرْآنِ فَلَيْسَ مِنَّا). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ جَيِّدٍ.

1007- Ji Ebû Lubabe Beşîrê kurê Ebdil-Munzir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Kesê dengê xwe bi Qur'anê xweş neke ew ne ji me ye." *Ebû Dawûd bi senedeke rind rîwayet kiriye.*

١٠٠٨- وَعَنِ ابْنِ مَسْعودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ لِي النَّبِيُّ ﷺ: (اِقْرَأْ عَلَيَّ الْقُرْآنَ)، فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ الله، أَقْرَأُ عَلَيْكَ وَعَلَيْكَ أُنْزِلَ؟ قَالَ: (إِنِّي أُحِبُّ أَنْ أَسْمَعَهُ مِنْ غَيْرِي) فَقَرَأْتُ عَلَيْهِ سُورَةَ النِّسَاءِ حَتَّى جِئْتُ إِلَى هَذِهِ الآيَة: (فَكَيْفَ إِذَا جِئْنَا مِنْ كُلِّ أُمَّةٍ بِشَهِيدٍ وَجِئْنَا بِكَ عَلَى هؤُلاءِ شَهِيداً) قَالَ: (حَسْبُكَ الآنَ) فَالْتَفَتُّ إِلَيْهِ، فَإِذَا عَيْنَاهُ تَذْرِفَانِ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1008- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Tu Qur'anê ji min re bixwîne." Min got: Ya Pêxemberê Xwedê, ezê çawa ji te re Qur'anê bixwînim, gava ku Qur'an jî li ser te nazil bûye? Ewî (s.) got: "Ez hez dikim Qur'anê ji hinekê din guhdarî bikim. Vêca min jî jê re sûretê Nîsa xwend heta vê ayetê: "Wextê em ji her ummetekê şahidekî bînin û em te jî bikin şahid li ser Wan, wê çawa be? Ewî (s.) got: "Vêca niha bes e." Vêca min berê xwe dayê û min dît ku her du çavên wî (s.) hêstir dibarînin." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ الْحَثِّ عَلَى سُوَر وَآيَات مَخْصُوصَة

## TEŞWÎQA LI SER HINEK SÛRE Û AYETÊN KIFŞ

١٠٠٩- عَنْ أَبِي سَعِيدٍ رَافِعِ بْنِ الْمُعَلَّى ﷺ قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ الله ﷺ: (أَلاَ أُعَلِّمُكَ أَعْظَمَ سُورَةٍ فِي الْقُرْآنِ قَبْلَ أَنْ تَخْرُجَ مِنَ الْمَسْجِدِ؟) فَأَخَذَ بِيَدِي، فَلَمَّا أَرَدْنا أَنْ نَخْرُجَ قُلْتُ: يَا رَسُولَ الله إِنَّكَ قُلْتَ: لأُعَلِّمَنَّكَ أَعْظَمَ سُورَةٍ فِي الْقُرْآنِ؟ قَالَ: (الْحَمْدُ لِلَّهِ رَبِّ الْعَالَمِينَ هِيَ السَّبْعُ الْمَثَانِي وَالْقُرْآنُ الْعَظِيمُ الَّذِي أُوتِيتُهُ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1009- Ji Ebû Se'îd Rafi'ê kurê Mu'ella (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Beriya ku tu ji mizgeftê derkevî ez mezintirê sûretê Qur'anê hînî te bikim? Vêca Pêxemberê Xwedê bi destê min girt. Wextê me niyet kir ku em ji mizgeftê derkevin, min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Te got: Ezê mezintirê sûretê Qur'anê hînî te bikim. Îcar ewî (s.) got: Ewya, *sûretê fatîheyê* ye ku heft-ayet in, di her nimêjê de dibare dibin, hem ewya, Qur'ana ku bo min hinartî ye. " *Buxarî riwayet kiriye.*

١٠١٠- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ فِي: (قُلْ هُوَ الله أَحَدٌ: وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ، إِنَّهَا لَتَعْدِلُ ثُلُثَ الْقُرْآنِ).

وَفِي رِوَايَةٍ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ لِأَصْحَابِهِ: (أَيَعْجِزُ أَحَدُكُمْ أَنْ يَقْرَأَ بِثُلُثِ الْقُرْآنِ فِي لَيْلَةٍ فَشَقَّ ذَلِكَ عَلَيْهِمْ، وَقَالُوا: أَيُّنَا يُطِيقُ ذَلِكَ يَا رَسُولَ الله، فَقَالَ: ﴿قُلْ هُوَ الله أَحَدٌ ۝ اللَّهُ الصَّمَدُ﴾ ثُلُثُ الْقُرْآنِ) رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1010- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) di derbarê sûretê "Qul huwel-lahû ehed" de gotiye: "Ez bi wî Xwedayê ku nefsa min bi destê wî sond dixwim ku ev sûret (xêra wê), beramberî sêyeka Qur'anê ye."

Di senedekê de: Pêxemberê Xwedê (s.) ji eshabê xwe re got: "Kes ji we dikare di şevekê de sêyeka Qur'anê bixwîne? Vêca eva li ser wan giran hat û gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Kî ji me vêya dikare? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Qul huwel-lahû ehed, ellahus-semed" sêyeka Qur'anê ye." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٠١١- وَعَنْهُ، أَنَّ رَجُلاً سَمِعَ رَجُلاً يَقْرَأُ: (قُلْ هُوَ الله أَحَدٌ) يُرَدِّدُهَا، فَلَمَّا أَصْبَحَ جَاءَ إِلَى رَسُولِ الله ﷺ فَذَكَرَ ذَلِكَ لَهُ وَكَأَنَّ الرَّجُلُ يَتَقَالُّهَا فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ، إِنَّهَا لَتَعْدِلُ ثُلُثَ الْقُرْآنِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1011- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî ji yekî bihîst ku ewî Sûretê "Qul huwel-lahû ehed"ê bi tekrar tekrar dixwend. Vêca ew mirov sibetirê hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û her wekî ew tekrar tekrar xwendin hindik didît û jê re ev yeka zikir kir. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Ez bi wî Xwedayê ku nefsa min bi destê wî ye sond dixwim ku Sûretê "Qul huwel-lahû ehed"ê hemberî sêyeka Qur'anê ye." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٠١٢- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ فِي: قُلْ هُوَ الله أَحَدٌ (إِنَّهَا تَعْدِلُ ثُلُثَ الْقُرْآنِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1012-Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) di derbarê "Qul huwel-lahû ehed"ê de gotiye: "Bêguman ew sûret hemberî sêyeka Qur'anê ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠١٣- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ رَجُلاً قَالَ: يَا رَسُولَ الله إِنِّي أُحِبُّ هَذِهِ السُّورَةَ: ﴿قُلْ هُوَ اللَّهُ أَحَدٌ﴾ قالَ: (إِنَّ حُبَّهَا أَدْخَلَكَ الْجَنَّةَ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

1013- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî got: Ya Pêxemberê Xwedê, ez ji vî Sûretê "Qul huwel-lahû ehed"ê hez dikim. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Hezjêkirina wê, dê te bibe cennetê." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

١٠١٤- وَعَنْ عُقْبَةَ بْنِ عَامِرٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: أَلَمْ تَرَ آيَاتٍ أُنْزِلَتْ هَذِهِ اللَّيْلَةَ لَمْ يُرَ مِثْلُهُنَّ قَطُّ؟ (قُلْ أَعُوذُ بِرَبِّ الْفَلَقِ) وَ(قُلْ أَعُوذُ بِرَبِّ النَّاسِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1014- Ji 'Uqbeyê kurê 'Amir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ya 'Amir! Qey tu nizanî bi wan ayetên ku vê şevê nazil bûne û yê mîna wan jî qet tune? Ku ew jî: "Qul e'ûzû bi Rebbîl-feleq" û "qul e'ûzû bi Rebbîn-nas" e. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠١٥- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَتَعَوَّذُ مِنَ الْجَانِّ، وَعيْنِ الإِنْسَانِ، حَتَّى نَزَلَتِ الْمعوِّذَتَانِ، فَلَمَّا نَزَلَتَا، أَخَذَ بِهِمَا وَتَرَكَ مَا سِوَاهُمَا. رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

1015- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji cinan û ji çavê însanan xwe disparte Xwedê. Heta her du mu'ewîzetan (yanî sûretê Feleq û sûretê Nas) nazil bûn. Vêca wextê ew her du sûret nazil bûn Pêxemberê Xwedê (s.) xwe bi wan her du sûretan girt û xeynê wan terikand. *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

١٠١٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مِنَ الْقُرْآنِ سُورَة ثَلاثُونَ آيَةً شَفَعَتْ لِرَجُلٍ حَتَّى غُفِرَ لَهُ، وَهِيَ (تَبَارَكَ الَّذِي بِيَدِهِ الْمُلْكُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1016- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ji Qur'anê sûretek heye sî ayet e û heta were bexişandin ji bo însanan mehderê dike. Û ew sûret jî sûretê: Tebarekel-lezî bi yedîhîl-mulk e. *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

١٠١٧-وَعَنْ أَبِي مَسْعُودٍ الْبَدْرِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَنْ قَرَأَ بِالآيَتَيْنِ مِنْ آخِرِ سُورَةِ الْبَقَرَةِ فِي لَيْلَةٍ كَفَتَاهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1017- Ji Ebû Mes'ûdê Bedrî (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Kesê bi şev her du ayetên dûmahîka sûretê Beqere bixwîne besî wî ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠١٨-وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا تَجْعَلُوا بُيُوتَكُمْ مَقَابِرَ، إِنَّ الشَّيْطَانَ يَنْفِرُ مِنَ الْبَيْتِ الَّذِي تُقْرَأُ فِيهِ سُورَةُ الْبَقَرَةِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1018- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn mala xwe nekin goristan. Bêguman şeytan ji wê mala ku sûretê Beqere tê de tê xwendin direve." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠١٩- وَعَنْ أُبَيِّ بْنِ كَعْبٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (يَا أَبَا الْمُنْذِرِ أَتَدْرِي أَيُّ آيَةٍ مِنْ كِتَابِ اللَّهِ مَعَكَ أَعْظَمُ؟ قُلْتُ: (الله لَا إِلَهَ إِلَّا هُوَ الْحَيُّ الْقَيُّومُ) فَضَرَبَ فِي صَدْرِي وَقَالَ: (لِيَهْنَكَ الْعِلْمُ أَبَا الْمُنْذِرِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1019-Ji Ubeyê kurê Ke'b (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ya Ebû Munzir! Qey tu dizanî kîjan ayet ji kitêba Xwedê ku te ji ber kiriye mezintir e? (Ubey dibêje) min got: "Ellahu la îlahe îlla huwel-heyyul-qeyyûm." Li ser vê gotinê Pêxemberê Xwedê (s.) destê xwe li sînga min xist û got: "Ya Ebû Munzir! Zanebûn û 'ilm ji bo te pîroz be." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٢٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: وَكَّلَنِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِحِفْظِ زَكَاةِ رَمَضَانَ، فَأَتَانِي آتٍ فَجَعَلَ يَحْثُو مِنَ الطَّعَامِ، فَأَخَذْتُهُ فَقُلْتُ: لَأَرْفَعَنَّكَ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: إِنِّي مُحْتَاجٌ، وَعَلَيَّ عِيَالٌ، وَبِي حَاجَةٌ شَدِيدَةٌ، فَخَلَّيْتُ عَنْهُ، فَأَصْبَحْتُ، فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (يَا أَبَا هُرَيْرَةَ، مَا فَعَلَ أَسِيرُكَ الْبَارِحَةَ؟) قُلْتُ: يَا رَسُولَ الله شَكَا حَاجَةً وَعِيَالاً، فَرَحِمْتُه، فَخَلَّيْتُ سَبِيلَهُ، فَقَالَ: (أَمَا إِنَّهُ قَدْ كَذَبَكَ وَسَيَعُودُ) فَعَرَفْتُ أَنَّهُ سَيَعُودُ لِقَوْلِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَرَصَدْتُهُ، فَجَاءَ يَحْثُو مِنَ الطَّعَامِ، فَقُلْتُ: لأَرْفَعَنَّكَ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: دَعْنِي

فَإِنِّي مُحْتَاجٌ، وَعَلَيَّ عِيَالٌ، لا أَعُودُ، فَرَحِمْتُهُ، فَخَلَّيْتُ سَبِيلَهُ، فَأَصْبَحْتُ فَقَالَ لِي رَسُولُ اللهِ ﷺ: (يَا أَبَا هُرَيْرَةَ، مَا فَعَلَ أَسِيرُكَ الْبَارِحَةَ؟) قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللهِ شَكَا حَاجَةً وَعِيَالاً، فَرَحِمْتُه، فَخَلَّيْتُ سَبِيلَهُ، فَقَالَ: (إِنَّهُ قَدْ كَذَبَكَ وَسَيَعُودُ) فَرَصَدْتُهُ الثَّالِثَةَ فَجَاءَ يَحْثُو مِنَ الطَّعَامِ، فَأَخَذْتُهُ، فقلتُ: لأَرْفَعَنَّكَ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَهَذَا آخِرُ ثَلَاثِ مَرَّاتٍ، أَنَّكَ تَزْعُمُ أَنَّكَ لَا تَعُودُ، ثُمَّ تَعُودُ، فَقَالَ: دَعْنِي فَإِنِّي أُعَلِّمُكَ كَلِمَاتٍ يَنْفَعُكَ اللهُ بِهَا، قلتُ: مَا هُنَّ؟ قَالَ: إِذَا أَوَيْتَ إِلَى فِرَاشِكَ فَاقْرَأْ آيَةَ الْكُرْسِيِّ، فإِنَّهُ لَنْ يَزَالَ عَلَيْكَ مِنَ اللَّهِ حَافِظٌ، وَلَا يَقْرَبُكَ شَيْطَانٌ حَتَّى تُصْبِحَ، فَخَلَّيْتُ سَبِيلَهُ، فَأَصْبَحْتُ، فَقَالَ لِي رَسُولُ اللهِ ﷺ: (مَا فَعَلَ أَسِيرُكَ الْبَارِحَةَ؟) قلْت: يَا رَسُولَ اللهِ زَعَمَ أَنَّهُ يُعَلِّمُنِي كَلِمَاتٍ يَنْفَعُنِي اللهُ بِهَا، فَخَلَّيْتُ سَبِيلَه قالَ: (مَا هِيَ؟) قلتُ: قَالَ لِي إِذَا أَوَيْتَ إِلَى فِرَاشِكَ فَاقْرَأْ آيَةَ الْكُرْسِيِّ مِنْ أَوَّلِها حَتَّى تَخْتِمَ الآيَةَ: (اللَّهُ لَا إِلَه إِلَّا هُوَ الْحَيُّ الْقَيُّومُ -الْبَقَرَةُ- ٢٥٥) وَقَالَ لِي: لَا يَزَالُ عَلَيْكَ مِنَ اللَّهِ حَافِظٌ، وَلَنْ يَقْرَبَكَ شَيْطَانٌ حَتَّى تُصْبِحَ، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (أَمَا إِنَّهُ قَدْ صَدَقَكَ وَهُوَ كَذُوبٌ، تَعْلَمُ مَنْ تُخَاطِبُ مُنْذُ ثَلاثٍ يَا أَبَا هُرَيْرَةَ؟) قُلْتُ: لَا، قَالَ: (ذَاكَ شَيْطَانٌ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1020- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ez kirim wekîl ku ez zekata meha Remezanê raçav bikim. Vêca mirovek hat û xwarin çeng kir. Û min jî ew mirov girt û min got: Ezê te bibim bal Pêxemberê Xwedê (s.). Ewî mirovî got: Ez hewcedar im, zar û zêçên min hene û ez di tengasiyê de me. Min jî li ser vê gotinê ew berda. Sibetirê Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Ya Ebû Hureyre! Esîrê te yê şevê din çi dike?” Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ewî ji hewcedarî û ji zar û zêçên xwe gilî kir, vêca dilê min pê şewitî û min berda. Îcar Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Tu bizanibe ku ewî derew li te kir û ewê dîsa bê.” Êdî min bi sedem gotina Pêxemberê Xwedê (s.) zanî ku yê dîsa were, vêca min ew raçav kir. Û ew mirov dîsa hat û xwarin çeng kir. Min got: Ezê te bibim bal Pêxemberê Xwedê (s.). Dîsa ewî mirovî got: Min berde, bêguman ez hewcedar im û zar û zêçên min hene. Û êdî ez nayêm. Dîsa dilê min pê şewitî û min ew berda rêya wî.

Sibetirê Pêxemberê Xwedê (s.) dîsa ji min re got: "Ya Ebû Hureyre! Esîrê te yê şeva din çi dike? Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ewî ji hewcedarî û ji zar û zêçên xwe gilî kir, vêca dilê min pê şewitî û min ew berda. Pêxemberê Xwedê (s.) dîsa got: "Bêguman ewî derew li te kir û ewê dîsa be." Vêca cara sisyan min ew raçav kir û ew dîsa hat û xwarin çeng kir. Min ew girt û min jê re got: Ezê te bibim bal Pêxemberê Xwedê (s.). Ev dûmayîka cara sisiyane tu dibêjî ez êdî nayêm û paşê dîsa tu têyî. Vêca ewî got: Tu min berde, çend gotinên ku bi kêrî te bê ezê ji te re bêjim. Min got: Ew çi ne? Ewî got: Wextê tu ketî nav cihê xwe ji bo razanê Ayeta Kursî bixwîne. Lewra heta sibehê ji aliyê Xwedê ve parêzgerek bi dom wê bi te re be û şeytan jî nêzîkî te nabe. Li ser vê gotina wî min jî ew berda. Sibetirê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Esîrê te yê şeva din çi dike?" Min jî got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ewî got: Ezê çend gotinên ku tu yê pê karê bibînî ji te re bêjim. Min jî ew berda. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ew gotinana çi ne?" Min jî got: Ewî ji min re got: Wextê tu ketî nav cihê xwe ji bo razanê Ayeta Kursî ji serî heta dûmayîka ayeta: *'Ellahû la îlahe îlla huwel-heyyul-qeyyûm* bixwîne. Û dîsa ji min re got: Heta sibehê ji aliyê Xwedê ve parêzgerek bi dom wê bi te re be û şeytan jî nêzîkî te nabe. Vêca Pêxember (s.) got: "Tu bizane, ewî ji te re rast gotiye, lêbelê ew derewker e. Ya Ebû Hureyre! Qey tu dizanî ka ewê ku evan her sê rojan bi te re diaxifî kî bû?" Min got: Naxêr. Ewî (s.) got: "Ew, şeytan bû." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٠٢١- وَعَنْ أَبِي الدَّرْدَاءِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (مَنْ حَفِظَ عَشْرَ آيَاتٍ مِنْ أَوَّلِ سُورَةِ الْكَهْفِ، عُصِمَ مِنَ الدَّجَّالِ). وَفِي رِوَايَةٍ: (مِنْ آخِرِ سُورَةِ الْكَهْفِ). رَوَاهُمَا مُسْلِم.

1021- Ji Ebû Derda' (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê deh ayetan ji serê sûretê Kehf ji ber bike ew ji xirabiya deccal tê stirandinê."

Di senedekê de: Ji dûmayîka sûretê Kehf."

*Ev her du jî Muslim rîwayet kirine.*

١٠٢٢- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: بَيْنَمَا جِبْرِيلُ ﷺ قَاعِدٌ عِنْدَ النَّبِيِّ ﷺ سَمِعَ نَقِيضاً مِنْ فَوْقِهِ، فَرَفَعَ رَأْسَهُ فَقَالَ: هَذَا بَابٌ مِنَ السَّمَاءِ فُتِحَ اليَوْمَ، وَلَمْ يُفْتَحْ قَطُّ إِلَّا الْيَوْمَ، فَنَزَلَ مِنْهُ مَلَكٌ فَقَالَ: هَذَا مَلَكٌ نَزَلَ إِلَى الأَرْضِ لَمْ يَنْزِلْ قَطُّ إِلَّا الْيَوْمَ، فَسَلَّمَ وَقَالَ: أَبْشِرْ

بِنُورَيْنِ أُوتِيتَهُمَا، لَمْ يُؤْتَهُمَا نَبِيّ قَبْلَكَ: فَاتِحَةِ الْكِتَابِ، وَخَوَاتِيمُ سُورَةِ الْبَقَرَةِ، لَنْ تَقْرَأَ بِحَرْفٍ مِنْهَا إِلَّا أُعْطِيتَه. رَوَاهُ مُسْلِم.

1022- Ji kurê 'Ebbas (r.), got: Rojekê Cebraîl (s.) li bal Pêxember (s.) rûniştîbû. Pêxember (s.) ji jorê dengek seh kir û serê xwe bilind kir. Vêca Cebraîl got: Ev deriyekî ji asîmana ye îro vebû û heta roja îro jî qet nehatibû vekirinê. Wextê milyaketek ji wî derî berjêr bû, Cebraîl got: Eva milyaketeke nazilê ser rûyê erdê bû û heta îro jî qet nazil nebû bû. Vêca ewî milyaketî silav da Pêxemberê Xwedê (s.) û got: Tu mizgîniyê bide (misilmana) bi her du nûr û ronahiyê ku ji tu Pêxemberê beriya te re nehatine dayin, bes ji te re hatine dayin: Sûretê Fatihe û ayetê dûmayîka sûretê Beqere ne (Amener-resûlû). Tu ji vana herfekê jî bixwînî miheqeq dê Xwedê mukafata te bide. *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ الإِجْتِمَاعِ عَلَى الْقِرَاءَةِ
## MUSTEHEBBÛNA KOMBÛNÊ JI BO XWENDINÊ

١٠٢٣ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا اجْتَمَعَ قَوْمٌ فِي بَيْتٍ مِنْ بُيُوتِ اللَّهِ يَتْلُونَ كِتَابَ الله، وَيَتَدَارَسُونَهُ بَيْنَهُمْ، إِلَّا نَزَلَتْ عَلَيهِم السَّكِينَةَ، وغَشِيَتْهُمُ الرَّحْمَة، وَحَفَّتْهُمُ الْمَلَائِكَة، وَذَكَرَهُم الله فِيمَنْ عِنْدَه). رَوَاهُ مُسْلِم.

1023- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Civatek di malek ji malê Xwedê de kom bibin, kitêba Xwedê (Qur'anê) bixwînin û di navbera xwe de ewê bi hevdu re muzakere bikin dê dilê wan aramdar be, rehmeta Xwedê dora wan bigre, milyaketê Xwedê wan dorpêç bikin û Xwedê jî dê di nav wan milyaketê ku li balê ne behsa wan bike." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ الْوُضُوءِ
## FEZÎLETA DESTNIMÊJÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا إِذَا قُمْتُمْ إِلَى الصَّلَاةِ فَاغْسِلُوا وُجُوهَكُمْ وَأَيْدِيَكُمْ إِلَى الْمَرَافِقِ وَامْسَحُوا بِرُؤُوسِكُمْ وَأَرْجُلَكُمْ إِلَى الْكَعْبَيْنِ وَإِن كُنتُمْ جُنُباً فَاطَّهَّرُوا وَإِنْ كُنتُم

مَرْضَى أَوْ عَلَى سَفَرٍ أَوْ جَاءَ أَحَد مِنْكُم مِنَ الْغَائِطِ أَوْ لامَسْتُمُ النِّسَاءَ فَلَمْ تَجِدُوا مَاءٍ فَتَيَمَّمُوا صَعِيداً طَيِّباً فَامْسَحُوا بِوُجُوهِكُمْ وَأَيْدِيكُمْ مِنْهُ مَا يُرِيدُ الله لِيَجْعَلَ عَلَيْكُمْ مِنْ حَرَجٍ وَلَكِنْ يُرِيدُ لِيُطَهِّرَكُمْ وَلِيُتِمَّ نِعْمَتَهُ عَلَيْكُمْ لَعَلَّكُمْ تَشْكُرونَ﴾

"Gelî ewên bawerî anîne! Heger we xwest ku nimêj bikin (hûn bê destnimêj bin), hûn ser û çavê xwe û destê xwe heta enîşkan bişon. Serê xwe Mesih kin û piyên xwe heta gûzekan bişon. Heger hûn bi cenabet bin xwe bişon. Heger hûn nexweş bin û yan di rêwîtiyê de bin û yan yek ji we ji teharetê (destav) hat û yan hûn çûne nivîna jinê û av bi destê we neket bi axek paqij teyemmumê bigirin û ser û çav û destê xwe pê vemalin/mesih kin. Xwedê naxwaze ku bertengî û zehmetiyê ji we re çêke, lêbelê ew dixwaze ku we ji gunehan paqij bike û nîmetên xwe li ser we temam bike. Da ku hûn şukrê wî bikin."[1]

١٠٢٤- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ أُمَّتِي يُدْعَوْنَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ غُرّاً مُحَجَّلِينَ مِنْ آثَارِ الْوُضُوءِ، فَمَنِ اسْتَطَاعَ مِنْكُمْ أَنْ يُطِيلَ غُرَّتَه، فَلْيَفْعَلْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1024-Ji Ebû Hureyre (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Bêguman ummeta min di roja qiyametê de wê were gazîkirin ku dest û piyên wan ji ber nûr û ronahiya destnimêjê dibiriqin. Vêca kî ji we dikare biriqandinê zêde bike, bila bike." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٠٢٥-وَعَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ خَلِيلِي ﷺ يَقُولُ: (تَبْلُغُ الحِلْيَةُ مِنَ الْمُؤْمِنِ حَيْثُ يَبْلُغُ الْوُضُوءُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1025-Dîsa ji wî (r.), got: Min ji dostê xwe (s.) bihîst, wiha digot: "Xemla mu'min digihêje cihê ku ava destnimêjê digihêjê." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٢٦- وَعَنْ عُثْمَانَ بْنِ عَفَّانَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ تَوَضَّأَ فَأَحْسَنَ الْوُضُوءَ خَرَجَتْ خَطَايَاهُ مِنْ جَسَدِهِ حَتَّى تَخْرُجَ مِنْ تَحْتِ أَظفارِهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1026-Ji Osmanê kurê 'Effan (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye:

1 Ma'îde, 5/6.

“Kesê destnimêjê bi awayekî rind bigre gunehê wî ji bedena wî derdikeve û heta ji binê neynûkê wî jî derdikeve.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٢٧ - وَعَنْهُ قَالَ: رَأَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ تَوَضَّأَ مِثْلَ وُضُوئِي هَذَا ثُمَّ قالَ: (مَنْ تَوَضَّأَ هَكَذَا، غُفِرَ لَهُ مَا تَقَدَّمَ مِنْ ذَنْبِهِ، وَكَانَتْ صَلاتُهُ وَمَشْيُهُ إِلَى المَسْجِدِ نَافِلَةً). رَوَاهُ مُسْلِم.

1027- Dîsa ji wî (r.), got: Min dît Pêxemberê Xwedê (s.) wekî vê destnimêja min destnimêj girt û paşê jî got: “Kî wiha destnimêj bigre gunehê wî yên derbasbûyî têne bexişandin, nimêja wî û çûyina wî ya mizgeftê jî kar û qezenceke zêde ne.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٢٨-وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا تَوَضَّأَ الْعَبْدُ الْمُسْلِم -أَوِ الْمُؤْمِنُ- فَغَسَلَ وَجْهَهُ خَرَجَ مِنْ وَجْهِهِ كُلُّ خَطِيئَةٍ نَظَرَ إِلَيْهَا بِعَيْنَيْهِ مَعَ الْمَاءِ، أَوْ مَعَ آخِرِ قَطْرِ الْمَاءِ، فَإِذَا غَسَلَ يَدَيْهِ، خَرَجَ مِنْ يَدَيْهِ كُلُّ خَطِيئَةٍ كَانَ بَطَشَتْهَا يَدَاهُ مَعَ الْمَاءِ، أَوْ مَعَ آخِرِ قَطْرِ الْمَاءِ، فَإِذَا غَسَلَ رِجْلَيْهِ، خَرَجَتْ كُلُّ خَطِيئَةٍ مَشَتْهَا رِجلَاهُ مَعَ الْمَاءِ، أَوْ مَعَ آخِرِ قَطْرِ الْمَاءِ، حَتَّى يَخْرُجَ نَقِيّا مِنَ الذُّنُوبِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1028- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê bendeyekî misilman –yan jî mu‘min– destnimêj girt: Vêca dema rûyê xwe şûşt hemû gunehên ku bi çavên xwe kiriye digel avê, yan jî digel dilopa dûmayîka avê derdikeve, dema her du destên xwe şûşt hemû gunehên ku bi destên xwe kiriye digel avê, yan jî digel dilopa dûmayîka avê derdikeve û dema her du piyên xwe şûşt hemû gunehên ku bi piyên xwe kiriye digel avê, yan jî digel dilopa dûmayîka avê derdikeve. Heta ew kes ji gunehan paqij dibe.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٢٩ - وَعَنْهُ: أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ أَتَى الْمَقْبَرَةَ فَقَالَ: (السَّلَامُ عَلَيْكُمْ دَارَ قَوْمٍ مُؤْمِنِيْنَ، وَإِنَّا، إِنْ شَاءَ الله، بِكُمْ لَاحِقُونَ، وَدِدْتُ أَنَّا قَدْ رَأَيْنَا إِخْوَانَنَا) قَالُوا: أَوَلَسْنَا إِخْوَانَكَ يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: (أَنْتُمْ أَصْحَابِي، وَإِخْوَانُنَا الَّذِينَ لَمْ يَأْتُوا بَعْدُ) قَالُوا: كَيْفَ تَعْرِفُ مَنْ لَمْ يَأْتِ بَعْدُ مِنْ أُمَّتِكَ يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ فَقَالَ: (أَرَأَيْتَ لَوْ أَنَّ رَجُلاً لَهُ خَيْلٌ غُراً مُحَجَّلَةٌ بَيْنَ

  

ظَهْرَيْ خَيْلٍ دُهْمٍ بُهْمٍ، أَلَا يَعْرِفُ خَيْلَهُ؟) قَالُوا: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: (فَإِنَّهُمْ يَأْتُونَ غُرّاً مُحَجَّلِينَ مِنَ الْوُضُوءِ، وَأَنَا فَرَطُهُمْ عَلَى الْحَوْضِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1029- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) hate goristanê û got: "Silav li ser we be gelî ehlê gorîstana mu'minan! Emê jî bi destûra Xwedê li pey we bên. Min dixwest ku me birayên xwe bidîtana. Sehabiyan gotin: Ya Pêxemberê Xwedê, qey em ne birayê te ne? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Hûn hevalên min in. Birayên me jî ew kesên ku hê nehatine ne. Sehabiya gotin: Ya Pêxemberê Xwedê, ummeta te ya hê nehatiye tuyê çawa wan nas bikî? Ewî (s.) got: "Ka ji min re bêje, eger hespeke yekî ku enî beş û biriqandî di nav hinek hespên reş û belek de be wê nas bike? Sehabiyan gotin: Belê, ya Pêxemberê Xwedê. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ummeta min jî ji ber ronahiya destnimêjê enî beş û biriqandî wê werin û ezê jî li ser hewzê li hêviya wan bim." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٣٠ - وَعَنْهُ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (أَلَا أَدُلُّكُمْ عَلَى مَا يَمْحُو الله بِهِ الخَطَايَا، وَيَرْفَعُ بِهِ الدَّرَجَاتِ؟) قَالُوا: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: (إِسْبَاغُ الْوُضُوءِ عَلَى الْمَكَارِهِ، وَكَثْرَةُ الخُطَا إِلَى الْمَسَاجِدِ، وَانْتِظَارُ الصَّلَاةِ بَعْدَ الصَّلَاةِ، فَذلِكُمُ الرِّبَاطُ، فَذلِكُمُ الرِّبَاطُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1030- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Gelo, ez we li ser wî tiştê ku Xwedê bi sedem wê gunehan paqij dike û derecan jî bilind dike mutelî bikim?" Sehabiyan gotin: Belê, ya Pêxemberê Xwedê. Ewî (s.) got: "Pêkanîna destnimêjê li nik tengasiya, pir gavavêtina bal mizgeftan ve û hêviya kirina nimêjeke piştî kirina nimêjekê. Cîhad eva ye, cîhad eva ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٣١- وَعَنْ أَبِي مَالِكٍ الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (الطُّهُورُ شَطْرُ الإِيمَانِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1031-Ji Ebû Malikê Eş'erî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Paqijî nîvê îmanê ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٣٢- وَعَنْ عُمَرَ بْنِ الخَطَّابِ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَا مِنْكُمْ مِنْ أَحَدٍ يَتَوَضَّأُ فَيُبْلِغُ

-أَوْ فَيُسْبِغُ الوُضُوءَ- ثُمَّ قَالَ: أَشْهَدُ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَحْدَهُ لَا شَرِيكَ لَهُ وَأَشْهَدُ أَنَّ مُحَمَّداً عَبْدُهُ وَرَسُولُهُ، إِلَّا فُتِحَتْ لَهُ أَبْوَابُ الْجَنَّةِ الثَّمَانِيَةُ يَدْخُلُ مِنْ أَيِّهَا شَاءَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَزَادَ التِّرْمِذِيُّ: (اللَّهُمَّ اجْعَلْنِي مِنَ التَّوَّابِينَ وَاجْعَلْنِي مِنَ الْمُتَطَهِّرِينَ).

1032- Ji ‘Umerê kurê Xettab (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kî ji we destnimêja xwe bi awayekî tam bigre û paşê jî bêje: Eşhedû enla îlahe îllellah wehdehû la şerîke leh we eşhedu enne Muhemmeden ‘ebdûhu we resûlûh. (Yanî; ez şehadetê didim ku ji xeynê Xwedê tu îlah tune, ew yek e û hevbeşê wî tune û ez dîsa şehadetê didim ku Hz. Muhemmed bende û qasidê wî ye.) Miheqeq her heşt deriyê cennetê wê jê re bêne vekirin. Û ew kîjan deriyî bivê wê di wî deriyî re bikeve cennetê.” *Muslim rîwayet kiriye.*

Tirmizî ev zêde kiriye: *Ellahumme îc‘elnî mînet-tewwabîne wec‘elnî mînel-mutetehherîn* (Yanî; Xwedayê min! Tu min ji tobekaran û ji paqijan bigerîne).

## بَابُ فَضْلِ الأَذَانِ
## FEZÎLETA BANGÊ

١٠٣٣-عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَوْ يَعْلَمُ النَّاسُ مَا فِي النِّدَاءِ والصَّفِّ الأَوَّلِ، ثُمَّ لَمْ يَجِدُوا إِلَّا أَنْ يَسْتَهِمُوا عَلَيْهِ لاسْتَهَمُوا عَلَيْهِ، وَلَوْ يَعْلَمُونَ مَا فِي التَّهْجِيرِ لاسْتَبَقُوا إِلَيْهِ، وَلَوْ يَعْلَمُونَ مَا فِي الْعَتَمَةِ وَالصُّبْحِ لَأَتَوهُمَا وَلَو حَبْواً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1033- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Heger însanan xêra bangê û seffa pêşiyê bizanîbana û bes bi pişkirinê jî cih bidîtana wê dîsa piş bikirana. Heger însanan xêra zûçûyina mizgeftê bizanîbaya wê di çûyina mizgeftê de pêşbazî bikirana. Û eger însanan xêra nimêja ‘eşa û sibehê bizanîbaya bi çarpîkan jî bûya wê biçûyana van her du nimêjan.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٣٤- وَعَنْ مُعَاوِيَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (الْمُؤَذِّنُونَ أَطْوَلُ النَّاسِ أَعْنَاقاً يَوْمَ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1034- Ji Mu‘awiye (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Roja qiyametê bangbêj ji aliyê stû ve dirêjtirê însanan in.” *Muslim rîwayet kiriye.*

  

١٠٣٥- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ أَبِي صَعْصَعَةَ، أَنَّ أَبَا سَعِيدٍ الخُدْرِيَّ ﷺ قَالَ لَهُ: إِنِّي أَرَاكَ تُحِبُّ الْغَنَمَ وَالْبَادِيَةَ فَإِذَا كُنْتَ فِي غَنَمِكَ -أَوْ بَادِيَتِكَ- فَأَذَّنْتَ لِلصَّلَاةِ، فَارْفَعْ صَوْتَكَ بِالنِّدَاءِ، فَإِنَّهُ لَا يَسْمَعُ مَدَى صَوْتِ المُؤَذِّنِ جِنٌّ، وَلَا إِنْسٌ، وَلَا شَيْءٌ، إِلَّا شَهِدَ لَهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ. قَالَ أَبُو سَعِيدٍ: سَمِعْتُهُ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ. رَوَاهُ البُخَارِي.

1035-Ji ‘Ebdullahê kurê ‘Ebdurrehmenê kurê Ebû Se‘see (r.) hatiye rîwayetkirin ku Ebû Se‘îdê Xudrî (r.) jê re got: Ez te dibînim ku tu ji pez û ji çolê hez dikî. Vêca wextê li çolê li ber pez te bang da dengê xwe bilind bike. Lewra heta dûmayîka cihê ku dengê bangbêjî diçê çi cin, çi însan û çi jî xeynê wan yê ku evî dengî dibihîzin miheqeq roja qiyametê dibin şahid û govanê wî.” Ebû Se‘îdê Xudrî (r.) got: Min ev gotin ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst. *Buxarî riwayet kiriye.*

١٠٣٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: إِذَا نُودِيَ بِالصَّلَاةِ، أَدْبَرَ الشَّيْطَانُ، لَهُ ضُرَاطٌ حَتَّى لَا يَسْمَعَ التَّأْذِينَ، فَإِذَا قُضِيَ النِّدَاءُ أَقْبَلَ، حَتَّى إِذَا ثُوِّبَ لِلصَّلَاةِ أَدْبَرَ، حَتَّى إِذَا قُضِيَ التَّثْوِيبُ أَقْبَلَ، حَتَّى يَخْطِرَ بَيْنَ المَرْءِ وَنَفْسِهِ يَقُولُ: اذْكُرْ كَذا، وَاذْكُرْ كَذا لِمَا لَمْ يَكُن يَذْكُرْ من قبلُ حَتَّى يَظَلَّ الرَّجُلُ مَا يَدْرِي كَمْ صَلَّى). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1036- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê ji bo nimêjê bang tê xwendin şeytan pişta xwe diguherine û da ku bangê nebihîze dixe qêrîn û qajîn û diçe. Wextê bang xelas dibe şeytan dizivire û tê. Û wextê qameta nimêjê tê kirin dîsa ew pişta xwe dizivirîne û diçe. Heta ku qamet xelas dibe ew dîsa dizîvire û tê. Ew dikeve navbera însan û nefsa wî (dikeve dilê wî) û dibêje: Nimêjkero, tu filan tiştî bi bîr bîne, tu filan tiştî bi bîr bîne. Ji berê de ew tişt qet nedihate bîrê. Heta wisa nimêjkerê dibe nizane ka çend rekat nimêj kiriye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٣٧-وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ العَاصِ ﷺ: أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (إِذَا سَمِعْتُمُ النِّدَاءَ فَقُولُوا مِثْلَ مَا يَقُولُ، ثُمَّ صَلُّوا عَلَيَّ، فَإِنَّهُ مَنْ صَلَّى عَلَيَّ صَلَاةً صَلَّى اللَّهُ

عَلَيْهِ بِهَا عَشْراً، ثُمَّ سَلُوا الله لِيَ الْوَسِيلَةَ، فَإِنَّهَا مَنْزِلَةٌ فِي الْجَنَّةِ لَا تَنْبَغِي إِلَّا لِعَبْدٍ مِنْ عِبَادِ اللَّهِ وَأَرْجُو أَنْ أَكُونَ أَنَا هُوَ، فَمَنْ سَأَلَ لِيَ الوَسِيلَةَ حَلَّتْ لَهُ الشَّفَاعَةُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1037- Ji ‘Ebdullahê kurê ‘Emrê kurê ‘As (r.) hatiye rîwayetkirin ku ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye, wiha digot: “Wextê we bang seh kir hûn jî wekî gotina bangbêj bibêjin, paşê hûn selewatan li ser min bidin. Lewra kî selewatan li ser min bide wê Xwedê jî deh selewatan li ser wî bide. Paşê daxwaza wesîlê ji bo min bikin. Lewra ew di cennetê de qonaxek e û ew qonax jî bes şirjaw e ji bendeyek ji bendeyê Xwedê re. Hêvîdar im ku ez ew mirov bim. Vêca kî ji min re wesîlê bixwaze mehdera min ji bo wî helal dibe.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٣٨- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ، أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (إِذَا سَمِعْتُمُ النِّدَاءَ، فَقُولُوا كَمَا يَقُولُ الْمُؤَذِّنُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1038- Ji Ebû Se‘îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê we bang bihîst hûn jî wekî gotina bangbêj bêjin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٣٩- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (مَنْ قَالَ حِينَ يَسْمَعُ النِّدَاءَ: اللَّهُمَّ رَبَّ هَذِهِ الدَّعْوَةِ التَّامَّةِ، وَالصَّلَاةِ الْقَائِمَةِ، آتِ مُحَمَّداً الْوَسِيلَةَ، وَالْفَضِيلَةَ، وَابْعَثْهُ مَقَاماً مَحْمُوداً الَّذِي وَعَدْتَه، حَلَّتْ لَهُ شَفَاعَتِي يَوْمَ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1039- Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê wextê bangê seh dike bila wiha bêje: ‘Ey Xweda! Rebbê vê daweta bêkêmanî û vê nimêja ku tê kirin! Tu wesîlê û fezîletê bidî Hz. Muhemmed (s.). Tu wî bişînî meqamê mehmûd yê ku te pê soz daye.’ Mehdera min di roja qiyametê de ji bo wî helal dibe.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٠٤٠- وَعَنْ سَعْدِ بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: (مَنْ قَالَ حِينَ يَسْمَعُ الْمُؤَذِّنَ: أَشْهَدُ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَحْدَهُ لَا شَرِيكَ لَهُ، وَأَنَّ مُحَمَّداً عَبْدُهُ وَرَسُولُهُ، رَضِيتُ بِاللَّهِ رَباً، وَبِمُحَمَّدٍ رَسُولاً، وَبِالإِسْلَام دِيناً، غُفِرَ لَهُ ذَنْبُهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1040- Ji Se‘dê kurê Ebî Weqqas (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye:

  

"Kesê ku wextê bangbêj dibihîze bila wiha bêje: Ez şehadetê didim ku ji xeynê Xwedê tu îlah tune, ew yek e, hevbeşê wî tune û dîsa ez şehadetê didim ku Hz. Muhemmed bende û qasidê wî ye. Ez Xwedê bi rebbîtî, Hz. Muhemmed bi pêxembertî û Îslamê jî bi dîntî qebûl dikim bûme. Gunehê wî têne bexişandin." *Muslim riwayet kiriye.*

١٠٤١ - وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (الدُّعَاءُ لَا يُرَدُّ بَيْنَ الأَذَانِ وَالإِقَامَةِ).

رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1041- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Dua di navbera bang û qametê de nayê vegerandin (tê qebûl kirin)." *Ebû Dawûd û Tirmizî riwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ فَضْلِ الصَّلَوَات
## FEZÎLETA NIMÊJÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿إِنَّ الصَّلَاةَ تَنْهَى عَنِ الْفَحْشَاءِ وَالْمُنْكَرِ﴾

"Bi rastî nimêj berê mirov ji hemû gunehên zêde pîs, kiryarê kirêt û neşêrîn dizivirîne."[1]

١٠٤٢ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (أَرَأَيْتُمْ لَوْ أَنَّ نَهْراً بِبَابِ أَحَدِكُم يَغْتَسِلُ مِنْه كُلَّ يَوْمٍ خَمْسَ مَرَّاتٍ، هَلْ يَبْقَى مِنْ دَرَنِهِ شَيْءٌ؟) قَالُوا: لَا يَبْقَى مِنْ دَرَنِهِ شَيْءٌ، قَالَ: (فَذلِكَ مَثَلُ الصَّلَوَاتِ الْخَمْسِ، يَمْحُو الله بِهِنَّ الخَطَايَا).

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1042- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Ka fikra we çi ye di vê derbarê de, ku eger li ber derê mala yekî ji we de çemek hebe û ew her roj pênc wexta/dana xwe di wî çemî de bişo, gelo ji qirêjiya wî tiştek dimîne?" Sehabiyan gotin: Ji qirêjiya wî tiştek namîne. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Eva mesela pênc dan nimêj e

1 'Enkebût, 29/45.

ku Xwedê bi wan her pênc dana gunehan paqij dike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٤٣- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (مَثَلُ الصَّلَوَاتِ الْخَمْسِ كَمَثَلِ نَهْرٍ جَارٍ غَمْرٍ عَلَى بَابِ أَحَدِكُمْ يَغْتَسِلُ مِنْهُ كُلَّ يَوْمٍ خَمْسَ مَرَّاتٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1043- Ji Cabir (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mesela pênc wext nimêjan wekî çemekî ku li ber derê mala yekî ji we diherike û her rojê ew mirov xwe pênc caran tê de dişo ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٤٤- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ: أَنَّ رَجُلاً أَصَابَ مِنِ امْرَأَةٍ قُبْلَةً، فَأَتَى النَّبِيَّ ﷺ فَأَخْبَرَهُ فَأَنْزَلَ الله تَعَالَى: (وَأَقِمِ الصَّلَاةَ طَرَفَيِ النَّهَارِ وَزُلَفاً مِنَ اللَّيْلِ إِنَّ الْحَسَنَاتِ يُذْهِبْنَ السَّيِّئَاتِ) فَقَالَ الرَّجُلُ: أَلِيَ هَذَا؟ قَالَ: (لِجَمِيعِ أُمَّتِي كُلِّهِمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1044- Ji kurê Mes'ûd (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî jinikek maç kir û hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û ew (s.) bi vê yekê agahdar kir. Li ser vê yekê Xwedê te'ala (ev ayeta) nazil kir: *"Tu her du danê rojê û di destê sibehê de nimêj bike. Bêguman qencî gunehan mehû dike."*[1] Vêca ewî mirovî got: Ya Pêxemberê Xwedê, ev ji bona min tenê ye? Ewî (s.) got: "Ji bo hemî ummeta min e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٤٥- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (الصَّلَوَاتُ الْخَمْسُ، وَالْجُمُعَةُ إِلَى الْجُمُعَةِ، كَفَّارَةٌ لِمَا بَيْنَهُنَّ، مَا لَمْ تُغشَ الْكَبَائِرُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1045- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Her pênc nimêj, ji înê heta înê dibin keffaretê wan gunehên ku di neqeba wan de hatine kirin, bi wî şertê ku gunehên mezin nehatibin kirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٤٦- وَعَنْ عُثْمَانَ بْنِ عَفَّانَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (مَا مِنِ امْرِئٍ مُسْلِمٍ تَحْضُرُهُ صَلَاةٌ مَكْتُوبَةٌ فَيُحْسِنُ وُضُوءَهَا، وَخُشُوعَهَا، وَرُكُوعَهَا، إِلَّا كَانَتْ كَفَّارَةً لِمَا قَبْلَهَا مِنَ الذُّنُوبِ مَا لَمْ تُؤْتَ كَبِيرَةٌ، وَذَلِكَ الدَّهْرَ كُلَّهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1 Hûd, 11/114.

  

1046- Ji Osmanê kurê ‘Effan (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Çi kesê misilman wextê ku nimêja ferz lê hazir bibe, vêca ew destnimêja wê nimêjê, xuşû‘/heybet û rukû‘a wê bi awayekî rind pêk bîne, miheqeq ew dibe kefaret ji bo gunehê wî yê derbasbûyî, heke ku gunehên mezin nehatibin kirin. Û di hemû wextan de wiha ye.” *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ صَلَاةِ الصُّبْحِ وَالْعَصْرِ

## FEZÎLETA NIMÊJA SIBEHÊ Û BERÊVARÊ

١٠٤٧- عَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ صَلَّى الْبَرْدَيْنِ دَخَلَ الْجَنَّةَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1047- Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê her du nimêjên hênkayiyê (nimêja sibe û berêvarê) bike dê here cennetê.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٤٨- وَعَنْ أَبِي زُهَيْرِ بْنِ عُمَارَةَ بْنِ رُؤَيْبَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللهِ ﷺ يَقُولُ: (لَنْ يَلِجَ النَّارَ أَحَدٌ صَلَّى قَبْلَ طُلوعِ الشَّمْسِ وَقَبْلَ غُرُوبِهَا) يَعْنِي الْفَجْرَ وَالْعَصْرَ. رَوَاهُ مُسْلِم.

1048- Ji Ebû Zuheyrê kurê ‘Umareyê kurê Ruweybe (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Kesê beriya hilatin û avabûna rojê nimêj bike, yanî; sibe û berêvar, naçê cehennemê.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٤٩- وَعَنْ جُنْدُبِ بْنِ سُفْيَانَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (مَنْ صَلَّى الصُّبْحَ فَهُوَ فِي ذِمَّةِ اللَّهِ فَانْظُرْ يَا ابْنَ آدَمَ، لَا يَطْلُبَنَّكَ اللهُ مِنْ ذِمَّتِهِ بِشَيْءٍ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1049- Ji Cundubê kurê Sufyan (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê nimêja sibehê bike di ehd û zimmeta Xwedê de ye. Vêca mirovo, tu baldar be! Bila Xwedê ji tu tiştê di zimmeta xwe de te berpirsiyar neke.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٥٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (يَتَعَاقَبُونَ فِيكُم مَلَائِكَةٌ بِاللَّيْلِ، وَمَلَائِكَةٌ بِالنَّهَارِ، وَيَجْتَمِعُونَ فِي صَلَاةِ الصُّبْحِ وَصَلَاةِ الْعَصْرِ، ثُمَّ يَعْرُجُ الَّذِينَ بَاتُوا

فِيكُم، فَيَسْأَلُهُمُ الله- وَهُوَ أَعْلَمُ بِهِمْ- كَيْفَ تَرَكْتُمْ عِبَادِي؟ فَيَقُولُونَ: تَرَكْنَاهُمْ وَهُمْ يُصَلُّونَ، وَأَتَيْنَاهُمْ وَهُمْ يُصَلُّونَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1050- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Di nav we de hinek milyaket bi şev û hinek jî bi roj, bi dor tên û diçin. Ew di nimêja sibeh û ya berêvarê de kom dibin, paşê jî ew milyaketê ku şevê li bal we mane bilindî hizûra Xwedê dibin û vêca Xwedê ji wan –ku ew (c.c.) ji wan zanatir e– pirs dike: We bendeyê min li ser çi rewşê hişt? Ew jî dibêjin: Me ew li ser nimêje hiştin û em çûne bal wan dîsa wan nimêj dikir." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٥١- وَعَنْ جَرِيرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ الْبَجَلِيِّ ﷺ قَالَ: كُنَّا عِنْدَ النَّبِيِّ ﷺ فَنَظَرَ إِلَى الْقَمَرِ لَيْلَةَ الْبَدْرِ فَقَالَ: (إِنَّكُمْ سَتَرَوْنَ رَبَّكُمْ كَمَا تَرَوْنَ هَذَا الْقَمَرَ، لَا تُضَامُونَ فِي رُؤْيَتِهِ، فَإِنِ اسْتَطَعْتُمْ أَنْ لَا تُغْلَبُوا عَلَى صَلَاةٍ قَبْلَ طُلُوعِ الشَّمْسِ، وَقَبْلَ غُرُوبِهَا فَافْعَلُوا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: (فَنَظَرَ إِلَى الْقَمَرِ لَيْلَةَ أَرْبَعَ عَشْرَةَ).

1051- Ji Cerîrê kurê 'Ebdullah Becelî (r.), got: Em bal Pêxemberê Xwedê (s.) bûn, Ewî li heyva roja çardehî dinêrî û vêca got: "Hûn evê heyvê çawa dibînin, hûnê Rebbê xwe jî bibînin û hûn di dîtina wî de jî zehmetiyê nakşînin. Vêca eger hûn bikaribin nimêja beriya hilatin û avabûna rojê bikin, hûn bikin. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di senedekê de: Ewî (s.) li heyva şeva çardehî nihêrî.

١٠٥٢- وَعَنْ بُرَيْدَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (مَنْ تَرَكَ صَلَاةَ الْعَصْرِ فَقَدْ حَبِطَ عَمَلُهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1052- Ji Bureyde (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê nimêja berêvarê biterikîne miheqeq 'emelê wî betal dibe." *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ الْمَشْيِ إِلَى الْمَسَاجِدِ
## FEZÎLETA ÇÛYINA MIZGEFTAN

١٠٥٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (مَنْ غَدَا إِلَى الْمَسْجِدِ أَوْ رَاحَ، أَعَدَّ الله لَهُ

فِي الْجَنَّةِ نُزُلاً كُلَّمَا غَدَا أَوْ رَاحَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1053- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Kesê sibeha û yan jî êvara here mizgeftên Xwedê, di her çûyin û hatina wî de, di cennetê de ji wî re qonaxan çêdike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٥٤- وعَنْهُ أنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (مَنْ تَطَهَّرَ فِي بَيْتِهِ، ثُمَّ مَضَى إِلَى بَيْتٍ مِنْ بُيُوتِ اللَّهِ، لِيَقْضِيَ فَرِيضَةً مِنْ فَرَائِضِ اللَّهِ، كَانَتْ خُطْوَاتُهُ، إِحْدَاهَا تَحُطُّ خَطِيئَةً، والأُخْرَى تَرْفَعُ دَرَجَةً). رَوَاهُ مُسْلِمْ.

1054- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Kesê di mala xwe de baş destnimêj bigre, paşê ji bo kirina ferzek ji ferzê Xwedê here malek ji malê Xwedê, vêca her ji du gavên wî; yek gunehan dibe û ya din jî dereca wî bilind dike." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٥٥- وَعَنْ أُبَيِّ بْنِ كَعْبٍ ﷺ قَالَ: كَانَ رَجُلٌ مِنَ الأَنْصَارِ لَا أَعْلَمُ أَحَداً أَبْعَدَ مِنَ الْمَسْجِدِ مِنْهُ، وَكانَتْ لَا تُخْطِئُهُ صَلَاةٌ فَقِيلَ لَهُ: لَوْ اشْتَرَيْتَ حِمَاراً تَرْكَبُهُ فِي الظَّلْمَاءِ وَفِي الرَّمْضَاءِ؟ قَالَ: مَا يَسُرُّنِي أَنَّ مَنْزِلِي إِلَى جَنْبِ الْمَسْجِدِ، إِنِّي أُرِيدُ أَنْ يُكْتَبَ لِي مَمْشَايَ إِلَى الْمَسْجِدِ، وَرجُوعِي إِذَا رَجَعْتُ إِلَى أَهْلِي، فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (قَدْ جَمَعَ الله لَكَ ذَلِكَ كُلَّهُ). رَوَاهُ مُسْلِمْ.

1055- Ji Ubeyê kurê Ke'b (r.), got: Mirovekî Ensarî hebû, min ji mala wî dûrtirê mizgeftê mala tu kesî nizanîbû, û tu nimêjên di mizgeftê de jî li wî derbas nedibûn. Vêca jê re hate gotin: Xwezî di tarîtiyê û di rojên germ de ji bo lê sîwarbûnê te kerek bistenda. Ewî jî got: Nêzîkbûna mala min bal mizgeftê ve min kêfxweş nake. Ez hez dikim ku xêra çûyina min ya bal mizgeftê ve û vegera min ya bal zar û zêçên min, ji min re bê nivîsandin. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Xwedê ew xêr hemû ji te re kom kiriye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٥٦- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: خَلَتِ الْبِقَاعُ حَوْلَ الْمَسْجِدِ، فَأَرَادَ بَنُو سَلَمَةَ أَنْ يَنْتَقِلُوا قُرْبَ الْمَسْجِدِ، فَبَلَغَ ذَلِكَ النَّبِيَّ ﷺ فَقَالَ لَهُمْ: (بَلَغَنِي أَنَّكُمْ تُرِيدُونَ أَنْ تَنْتَقِلُوا قُرْبَ

الْمَسْجِدِ؟) قَالُوا: نَعَمْ، يَا رَسُولَ الله، قَدْ أَرَدْنَا ذَلِكَ، فَقَالَ: (يَا بَنِي سَلِمَةَ دِيَارَكُمْ تَكْتُبُ آثَارُكُمْ، دِيَارَكُمْ تَكْتُبُ آثَارُكُمْ) فَقَالُوا: مَا يَسُرُّنَا أَنَّا كُنَّا تَحَوَّلْنَا. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1056- Ji Cabir (r.), got: Erdê çarmedora mizgeftê vala bû, vêca êla Benû Seleme xwestin ku malê xwe bînin nêzîkî mizgeftê. Ev agahî gihîşte Pêxember (s.) û Pêxember ji wan re got: "Agahî gihîşte min ku hûn hez dikin bar bikin werine nêzîkî mizgeftê? Ewan gotin: Belê, ya Pêxemberê Xwedê, me wilo divê. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Gelî Benû Seleme! Hûn ji cihê xwe veneqetin da ku ji bo gavên we xêr bên nivîsandin. Hûn ji cihê xwe veneqetin da ku ji bo gavên we xêr bên nivîsandin." Li ser vê gotinên ewan gotin: Êdî barkirina me, me kêfxweş nake. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٥٧- وَعَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (إِنَّ أَعْظَمَ النَّاسِ أَجْراً فِي الصَّلَاةِ أَبْعَدُهُمْ إِلَيْهَا مَمْشىً، فَأَبْعَدُهُمْ، وَالَّذِي يَنْتَظِرُ الصَّلَاةَ حَتَّى يُصَلِّيَها مَعَ الإِمَامِ أَعْظَمُ أَجْراً مِنَ الَّذِي يُصَلِّي ثُمَّ يَنَامُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1057- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman mezintirê însanan yê di derbarê nimêjê de ji aliyê xêr û sewabê ve ew e ku bi rêveçûyinê yê dûrtirê mizgeftê ye. Û pêde pêde yê dûrtir xêra wî zêdetir e. Kesê li hêviya nimêjê dimîne ku digel îmam bike ji aliyê xêrê ve ji wî kesê ku nimêj dike paşê radizê mezintir e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٥٨- وَعَنْ بُرَيْدَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ قَالَ: (بَشِّروا الْمَشَّائِينَ فِي الظُّلَمِ إِلَى الْمَسَاجِدِ بِالنُّورِ التَّامِّ يَوْمَ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرمِذِي.

1058- Ji Bureyde (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Hûn mizgîniya nûr û ronahiyeke tam di roja qiyametê de bidine wan kesên ku di tarîtiyê de bi meş diçine mizgeftan." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine.*

١٠٥٩- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (أَلَا أَدُلُّكُمْ عَلَى مَا يَمْحُو الله بِهِ الْخَطَايَا، وَيَرْفَعُ بِهِ الدَّرَجَاتِ؟ قَالُوا: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: (إِسْبَاغُ الْوُضُوءِ عَلَى الْمَكَارِهِ، وَكَثْرَةُ الخُطَا إِلَى الْمَسَاجِدِ، وَانْتِظَارُ الصَّلَاةِ بَعْدَ الصَّلَاةِ، فَذلِكُمُ الرِّبَاطُ،

فَذلِكُمُ الرِّبَاطُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1059- Li gora rîwayeta Ebû Hureyre (r.) bêşik Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Gelo, ez we li ser wî tiştê ku Xwedê bi sedem wî gunehan paqij dike û derecan jî bilind dike mutelî bikim?" Sehabiyan gotin: Belê, ya Pêxemberê Xwedê. Ewî (s.) got: "Pêk anîna destnimêjê li nik tengasiyan, pir gav avêtina bal mizgeftan ve û hêviya kirina nimêjekê piştî kirina nimêjekê. Cîhad eva ye, cîhad eva ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٦٠- وَعَنْ أَبِي سَعِيدِ الْخُدْرِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِذَا رَأَيْتُمُ الرَّجُلَ يَعْتَادُ الْمَسَاجِدَ فَاشْهَدُوا لَهُ بِالإِيمَانِ، قَالَ اللَّهُ عزَّ وَجَلَّ: ﴿إِنَّمَا يَعْمُرُ مَسَاجِدَ اللَّهِ مَنْ آمَنَ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ﴾ رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1060-Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Wextê we dît mirovekî ji xwe re çûyina mizgeftan xistiye 'edet, hûn şahidiya bawermendîtiya wî bikin. Xwedayê te'ala gotiye: *"Bi rastî yê ku mizgeftên Xwedê ava dikin tenê ewên bawerî bi Xwedê û bi roja axîretê anîne ne."*[1] *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ فَضْلِ إِنْتِظَارِ الصَّلاَةِ

## FEZÎLETA LIHÊVÎMAYINA NIMÊJÊ

١٠٦١- عنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا يَزَالُ أَحَدُكُمْ فِي صَلَاةٍ مَا دَامَتِ الصَّلَاةُ تَحْبِسُهُ، لَا يَمْنَعُهُ أَنْ يَنْقَلِبَ إِلَى أَهْلِهِ إِلَّا الصَّلَاةُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1061- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Heta ku yek ji we li hêviya nimêjê ye, heke ne ji ber nimêjê bûya wê biçûya nav zarokên xwe, ew di nimêjê de tê hesabê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٦٢- وَعَنْهُ، أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (الْمَلَائِكَةُ تُصَلِّي عَلَى أَحَدِكُمْ مَا دَامَ فِي مُصَلَّاهُ الَّذِي صَلَّى فِيهِ، مَا لَمْ يُحْدِثْ، تَقُولُ اللَّهُمَّ اغْفِرْ لَهُ، اللَّهُمَّ ارْحَمْهُ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1062- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Yek ji we di cihê nimêjkirina xwe de heta ku rûniştîbe, milyaket ji

1 Tewbe, 9/18.

wî re dua dikin û wiha dibêjin: Xwedayo! Tu ewî bibexişînî. Xwedayo! Tu rehmê li wî bikî.” *Buxarî riwayet kiriye.*

١٠٦٣- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ أَخَّرَ لَيْلَةً صَلَاةَ الْعِشَاءِ إِلَى شَطْرِ اللَّيْلِ ثُمَّ أَقْبَلَ عَلَيْنَا بِوَجْهِهِ بَعْدَمَا صَلَّى فَقَالَ: (صَلَّى النَّاسُ وَرَقَدُوا وَلَمْ تَزَالُوا فِي صَلَاةٍ مُنْذُ انتَظَرْتُمُوهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1063- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) şevekê nimêja ‘eşayê heta nîvê şevê paş xist. Paşê, piştî ku nimêj kir berê xwe da me û got: “Însana nimêj kirin û razan. Lêbelê hûn, heta ku hûn li benda vê nimêjê bûn, her wekî hûn her di nimêjê de bûn.” *Buxarî riwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ صَلَاةِ الْجَمَاعَةِ

## FEZÎLETA NIMÊJA BI CEMAET

١٠٦٤- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (صَلَاةُ الْجَمَاعَةِ أَفْضَلُ مِنْ صَلَاةِ الْفَذِّ بِسَبْعٍ وَعِشْرِينَ دَرَجَةً) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1064- Ji Îbnu ‘Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Nimêja bi cema‘et bi bîst û heft derecan ji nimêja tenê xêrtir e.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٦٥- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (صَلَاةُ الرَّجُلِ فِي جَمَاعَةٍ تُضَعَّفُ عَلَى صَلَاتِهِ فِي بَيْتِهِ وَفِي سُوقِهِ خَمْساً وَعِشْرِينَ ضِعْفاً، وَذَلِكَ أَنَّهُ إِذَا تَوَضَّأَ فَأَحْسَنَ الْوُضُوءَ، ثُمَّ خَرَجَ إِلَى الْمَسْجِدِ، لَا يُخْرِجُه إِلَّا الصَّلَاةُ، لَمْ يَخْطُ خَطْوَةً إِلَّا رُفِعَتْ لَهُ بِهَا دَرَجَةٌ، وَحُطَّتْ عَنْهُ بِهَا خَطِيئَةٌ، فَإِذَا صَلَّى لَمْ تَزَلِ الْمَلَائِكَة تُصَلِّي عَلَيْهِ مَا دَامَ فِي مُصَلَّاهُ، مَا لَمْ يُحْدِثْ تَقُولُ: اللَّهُمَّ صَلِّ عَلَيْهِ، اللَّهُمَّ ارْحَمْهُ، وَلَا يَزَالُ فِي صَلَاةٍ مَا انْتَظَرَ الصَّلَاةَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1065- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Nimêja mirovekî bi cema‘et bi bîst û pênc derecan ji nimêja wî ya li mal û sûka

  

wî zêdetir e. Lewra wextê wî mirovî destnimêja xwe qenc girt û paşê jî ji bona nimêjê ne ji bona tiştek dîtir here mizgeftê, bi her qevzekî/gaveka ku davêje derecek jê re bilind dibe û gunehekî wî tê bexişandin. Wextê nimêj kir heta ku di cihê lê nimêj kiriye û bêdestnimêj nebûye be milyaket ji wî re dua dikin û wiha dibêjin: Xwedayo! Tu rehmê lê bikî. Xwedayo! Bila dilê te pê bişewite. Ew mirov di nimêjê de tê hesabê heta ku li hêviya nimêjê ye." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٠٦٦- وَعَنْهُ قَالَ: أَتَى النَّبِيَّ ﷺ رجُلٌ أَعْمَى، فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، لَيْسَ لِي قَائِدٌ يقُودُنِي إِلَى الْمَسْجِدِ، فَسَأَلَ رَسُولَ الله ﷺ أَنْ يُرَخِّصَ لَهُ فَيُصَلِّي فِي بَيْتِهِ، فَرَخَّصَ لَهُ، فَلَمَّا وَلَّى دَعَاهُ فَقَالَ لَهُ: (هَلْ تَسْمَعُ النِّدَاءَ بِالصَّلَاةِ؟) قَالَ: نَعَمْ، قَالَ: (فَأَجِبْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1066- Dîsa ji wî (r.), got: Mirovekî kor hate bal Pêxember (s.) û got: Ya Pêxemberê Xwedê! Rêberekî min tune ku (destê min bigre) min bîne mizgeftê. Ji Pêxemberê Xwedê (s.) daxwaz kir ku destûrê ji bo wî bide ku ew di mala xwe de nimêj bike. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) jî destûra wî da. Wextê ew mirovê kor zivirî ku here, Pêxemberê Xwedê (s.) gazî wî kir û jê re got: "Tu dengê bangê dibihîzî?" Ewî got: Belê. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Nexwa tu îcabeta bangê bike." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٦٧- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ - وَقِيلَ: عَمْرو بْنِ قَيْسٍ الْمَعْرُوفِ بِابْنِ أُمِّ مَكْتُومٍ الْمُؤَذِّنِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنَّ الْمَدِينَةَ كَثِيرَةُ الْهَوَامِّ والسِّبَاعِ، فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (تَسْمَعُ حَيَّ عَلَى الصَّلَاةِ، حَيَّ عَلَى الْفَلَاحِ، فَحَيَّهلا). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

1067- Ji 'Ebdullah –yan ji 'Emrê kurê Qeys ewê ku bi Îbnî Ummu Mektumê bangbêj navdar e– (r.), got: Ya Pêxemberê Xwedê! Bêguman Medîne bi bihok û bi heywanên jakaw û dirende tijî ye. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: Tu dengê *heyye'les-selah* û dengê *heyye'lel-felah*ê dibîhîzî, ne wisa. Nexwa tu were cema'etê." *Ebû Dawûd bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

١٠٦٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ، لَقَدْ هَمَمْتُ أَنْ آمُرَ بِحَطَبٍ فَيُحْتَطَبَ، ثُمَّ آمُرَ بِالصَّلَاةِ فَيُؤَذَّنَ لَهَا، ثُمَّ آمُرَ رَجُلاً فَيَؤُمَّ النَّاسَ، ثُمَّ أُخَالِفَ

إِلَى رِجَالٍ فَأُحَرِّقَ عَلَيْهِمْ بِيُوتَهُمْ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1068- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ez bi wî Xwedayê ku nefsa min bi destê wî ye sond dixwim ku min nêt/niyet kir; ez emir bidim ku darê şewatê bêne kom kirin, paşê ez emrê nimêjê bikim û vêca ji bo wê jî ezan bê xwendin, paşê ez emrê mirovekî bikim ku ji însanan re îmamtiyê bike û paşê jî ez vegerim herim bal wan mirovê bê'uzir terka cema'etê kirine ez mala wan bi ser wan de bişewitînim." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٦٩- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: مَنْ سَرَّهُ أَنْ يَلْقَى الله تَعَالَى غَداً مُسْلِماً، فَلْيُحَافِظْ عَلَى هؤُلَاءِ الصَّلَوات، حَيْثُ يُنَادَى بِهِنَّ، فَإِنَّ اللَّهَ شَرَعَ لِنَبِيِّكُمْ سُنَنَ الْهُدَى، وَإِنَّهُنَّ مِنْ سُنَنِ الْهُدَى، وَلَو أَنَكُمْ صَلَّيْتُم فِي بُيُوتِكُمْ كَمَا يُصَلِّي هَذَا الْمُتَخَلِّفُ فِي بَيْتِهِ لَتَرَكتم سُنَّة نَبِيِّكُمْ، وَلَو تَرَكْتُم سُنَّةَ نَبِيِّكُمْ لَضَلَلْتُمْ، وَلَقَدْ رَأَيْتُنَا وَمَا يَتَخَلَّفُ عَنْهَا إِلَّا مُنافِقٌ مَعْلُومُ النِّفَاقِ، وَلَقَدْ كَانَ الرَّجُلُ يُؤْتى بِهِ، يُهَادَى بَيْنَ الرَّجُلَيْنِ حَتَّى يُقَامَ فِي الصَّفِّ. رَوَاهُ مُسْلِمْ.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ قَالَ: إِنَّ رَسُولَ الله ﷺ عَلَّمَنَا سُنَنَ الْهُدَى، وَإِنَّ مِنْ سُنَنِ الْهُدَى الصَّلَاةُ فِي الْمَسْجِدِ الَّذِي يُؤَذَّنُ فِيهِ.

1069- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Kesê kêfxweş dibe ku sibehê misilman here hizûra Xwedê te'ala, bila van nimêja muhafeze –wextê bal wan ve bê gazî kirin– bike. Lewra Xwedê ji bo Pêxemberê we (s.) rêya rasterê/hîdayetê vekiriye. Û ew nimêj jî ji rêyên hîdayetê ne. Heger, wekî vî mirovê ku ji nimêjê paş ve maye, di mala xwe de nimêj dike, hûn ji nimêjê di mala xwe de bikin bêguman hûn rêya Pêxemberê xwe diterikînin. Heger hûn rêya pêxemberê xwe biterikînin hûn dê rê berze bikin. Bêguman me didît ji xeynê munafiqê ku nifaqa wî eşkere ye tu kes ji nimêjê bi paş ve nediket. Û dîsa me didît ku mirovek (ê bê taqet û hîlet) di navbera du mirovan de dihate anîn heta ku di sefê de dihate bi cih kirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

Di senedekê de: Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) rêya hîdayetê hînî me kir. Û nimêjkirina li wê mizgefta ku tê de bang tê dayin jî ji wan rêyên hîdayetê ne.

١٠٧٠ - وَعَنْ أَبِي الدَّرْدَاءِ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللهِ ﷺ يَقُولُ: (مَا مِنْ ثَلَاثَةٍ فِي قَرْيَةٍ وَلَا بَدْوٍ لَا تُقَامُ فِيهِمُ الصَّلَاةُ إِلَّا قَدِ اسْتَحْوَذَ عَلَيْهِمُ الشَّيْطَانُ، فَعَلَيْكُمْ بِالْجَمَاعَةِ، فَإِنَّمَا يَأْكُلُ الذِّئْبُ مِنَ الْغَنَمِ الْقَاصِيَةَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

1070- Ji Ebû Derda (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Sê mirov, çi di gundekî de bin û çi jî di çolekê de bin, bi cema‘et di nav wan de nimêj neyê kirin dê şeytan museletê ser serê wan be. Vêca hûn bi cema‘et nimêj bikin. Lewra gur, peza ku ji kerî dûr ketiye dixwe.” *Ebû Dawûd bi senedeke hesen riwayet kiriye.*

## بَابُ الْحَثِّ عَلَى حُضُورِ الْجَمَاعَةِ فِي الصُّبْحِ وَالْعِشَاءِ
## TEŞWÎQA LI SER HAZIRBÛNA CEMA‘ETA SIBEH Û ‘EŞAYÊ

١٠٧١ - عَنْ عُثْمَانَ بْنِ عَفَّانَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ صَلَّى الْعِشَاءَ فِي جَمَاعَةٍ، فَكَأَنَّمَا قَامَ نِصْفَ اللَّيْلِ، وَمَنْ صَلَّى الصُّبْحَ فِي جَمَاعَةٍ، فَكَأَنَّمَا صَلَّى اللَّيْلَ كُلَّهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةِ التِّرْمِذِيِّ عَنْ عُثْمَانَ بْنِ عَفَانَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ شَهِدَ الْعِشَاءَ فِي جَمَاعَةٍ كَانَ لَهُ قِيَامُ نِصْفِ لَيْلَةٍ، وَمَنْ صَلَّى الْعِشَاءَ وَالْفَجْرَ فِي جَمَاعَةٍ، كَانَ لَهُ كَقِيَامِ لَيلَةٍ). قَالَ التِّرْمِذِيُّ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1071- Ji Osmanê kurê ‘Effan (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Kesê nimêja ‘eşayê bi cemaet bike her wekî ewî nîvê şevê bi îbadet derbas kiriye. Û kesê nimêja sibehê bi cema‘et bike her wekî ewî temamê şevê bi îbadet derbas kiriye.” *Muslim riwayet kiriye.*

Di seneda Tirmizî de: Ji Osmanê ‘Effan (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê bi cema‘etî nimêja ‘eşayê be (xêra) îbadetê nîvê şevê jê re heye. Û kesê bi cema‘etî nimêja sibeh û ‘eşayê be (xêra) îbadetê hemûyê şevê jê re heye.” *Tirmizî gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١٠٧٢ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (وَلَوْ يَعْلَمُونَ مَا فِي الْعَتَمَةِ وَالصُّبْحِ لَأَتَوْهُمَا وَلَوْ حَبْواً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1072- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Heger însanan xêra nimêja ‘eşa û sibehê bizanîbaya, bi çarpîkan bûya jî dê biçûyana wan her du nimêjan.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٧٣- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَيْسَ صَلاةٌ أَثْقَلَ عَلَى الْمُنَافِقِينَ مِنْ صَلاةِ الْفَجْرِ وَالْعِشَاءِ وَلَوْ يَعْلَمُونَ مَا فِيهِمَا لأَتَوْهُمَا وَلَوْ حَبْواً). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1073- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Tu nimêj li ser munafiqan ji nimêja sibeh û ‘eşayê girantir nîne. Heger ewan xêra wan her du nimêjan bizanîbaya, bi çarpîkan bûya jî dê biçûyana wan.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ الأَمْرِ بِالْمُحَافَظَةِ عَلَى الصَّلَوَاتِ الْمَكْتُوبَاتِ

## EMRÊ PARASTINA NIMÊJÊN FERZ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿حَافِظُوا عَلَى الصَّلَوَاتِ والصَّلَاةِ الْوُسْطَى﴾

“(Gelî misilmanan!) Hûn berdewam bin li ser nimêjên xwe û nimêja berêvarê (ji bîr nekin).”[1]

﴿فَإِنْ تَابُوا وَأَقامُوا الصَّلَاةَ وآتَوا الزَّكَاةَ فَخَلُّوا سَبِيلَهُمْ﴾

“Vêca eger tobe kirin, nimêj kirin û zekata malê xwe dan hûn jî wan serbest bikin.”[2]

١٠٧٤- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: سَأَلْتُ رَسُولَ الله ﷺ: أَيُّ الأَعْمَالِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: (الصَّلاةُ عَلَى وَقْتِهَا) قُلْتُ: ثُمَّ أَيٌّ؟ قَالَ: (بِرُّ الْوَالِدَيْنِ) قُلْتُ: ثُمَّ أَيٌّ؟ قَالَ: (الْجِهَادُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1074- Ji kurê Mes‘ûd (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) pirsî: Kîjan emel û kiryar çêtir e? Ewî (s.) got: “Nimêja di wextê de.” Min got: Piştre kîjan? Got: “Qenciya li dê û bavê ye.” Min got: Piştre kîjan? Ewî (s.) got: “Cîhada di rêya Xwedê de.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 Beqere, 2/238.
2 Tewbe, 9/5.

  

١٠٧٥- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (بُنِيَ الإِسْلَامُ عَلَى خَمْسٍ: شَهَادَةُ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا الله، وَأَنَّ مُحَمَّداً رَسُولُ اللَّهِ، وَإِقَامِ الصَّلَاةِ، وَإِيتَاءِ الزَّكَاةِ، وَحَجِّ الْبَيْتِ، وَصَوْمِ رَمَضَانَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1075- Ji Îbnu ‘Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Îslam li ser pênc bingehan hatiye ava kirin: Şehde dayina ku ji xeynê Xwedê tu îlah tune û Hz. Muhemmed jî qasidê wî ye, kirina nimêjê, dayina zekatê, çûyina hecê û girtina rojiya Remezanê.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٧٦- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أُمِرْتُ أَنْ أُقَاتِلَ النَّاسَ حَتَّى يَشْهَدُوا أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَأَنَّ مُحَمَّداً رَسُولُ اللَّهِ، وَيُقِيمُوا الصَّلَاةَ، وَيُؤْتُوا الزَّكَاةَ، فَإِذَا فَعَلُوا ذَلِكَ، عَصَمُوا مِنِّي دِمَاءَهُمْ وَأَمْوَالَهُمْ إِلَّا بِحَقِّ الإِسْلَامِ، وَحِسَابُهُمْ عَلَى الله). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1076- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Emrê min hatiye kirin ku ez bi însanan re şer bikim heta ku; şehde bidin ku ji xeynê Xwedê tu îlah tune û Hz. Muhemmed jî qasidê wî ye, nimêjê bikin û zekatê bidin. Wextê evan kirin xûn û malê xwe ji min distirînin. Bes heqê Îslamê ne tê de. Û hesabê wan jî li ser Xwedê ye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٧٧- وَعَنْ مُعَاذٍ ﷺ قَالَ: بَعَثَنِي رَسُولُ الله ﷺ إِلَى الْيَمَنِ فَقَالَ: (إِنَّكَ تَأْتِي قَوْماً مِنْ أَهْلِ الْكِتَابِ، فَادْعُهُمْ إِلَى شَهَادَةِ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ، وَأَنِّي رَسُولُ اللَّهِ، فَإِنْ هُمْ أَطَاعُوا لِذَلِكَ، فَأَعْلِمْهُمْ أَنَّ اللَّهَ تَعَالَى افْتَرَضَ عَلَيْهِمْ خَمْسَ صَلَوَاتٍ فِي كُلِّ يَوْمٍ وَلَيْلَةٍ، فَإِنْ هُمْ أَطَاعُوا لِذَلِكَ، فَأَعْلِمْهُمْ أَنَّ اللَّهَ افْتَرَضَ عَلَيْهِمْ صَدَقَةً تُؤْخَذُ مِنْ أَغْنِيَائِهِمْ فَتُرَدُّ عَلَى فُقَرَائِهِمْ، فَإِنْ هُمْ أَطَاعُوا لِذَلِكَ، فَإِيَّاكَ وَكَرَائِمَ أَمْوَالِهِمْ وَاتَّقِ دَعْوَةَ الْمَظْلُومِ، فَإِنَّهُ لَيْسَ بَيْنَهَا وَبَيْنَ الله حِجَابٌ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1077- Ji Mu‘az (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ez şandim Yemenê û got: “Tu wê herî bal qewmekî Ehlî kitêb. Vêca tu ewan dawet bike bal

şehdeanîna ku ji xeynê Xwedê tu îlah tune û ez jî qasidê wî me. Heger ewan îta'eta vêya kirin, tu bi wan bide zanîn ku Xwedê te'ala di her roj û şevê de pênc wext nimêj li ser wan ferz kiriye. Heger ewan îta'etî bi vêya kirin, tu bi wan bide zanîn ku Xwedê te'ala li sedeqe ser wan ferz kiriye ku wê ji dewlemendên wan bê standin Û we li feqîrên wan bê belav kirin. Heger ewan îta'et bi vêya jî kirin, êdî tu xwe ji hildana malê wan yê pir pak (ji bo zekatê) biparêze. Û xwe ji nifirê sîtembarî bistirîne. Lewra di navbera wê nifirê û Xwedê de perde tune." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٧٨ - وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ بَيْنَ الرَّجُلِ وَبَيْنَ الشِّرْكِ وَالْكُفْرِ تَرْكَ الصَّلَاةِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1078- Ji Cabir (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Bêguman ferqa di navbera mirov û şirk û kufrê de terikandina nimêjê ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٧٩ -وَعَنْ بُرَيْدَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (الْعَهْدُ الَّذِي بَيْنَنَا وَبَيْنَهُمُ الصَّلَاةُ، فَمَنْ تَرَكَهَا فَقَدْ كَفَرَ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1079- Ji Bureyde (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "'Ehd û soza navbera me û wan de nimêj e. Vêca kesê nimêjê biterikîne dibe kafir." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١٠٨٠ - وَعَنْ شَقِيقِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ التَّابِعِيِّ الْمُتَّفَقِ عَلَى جَلَالَتِهِ رَحِمَهُ اللَّهُ قَالَ: كَانَ أَصْحَابُ مُحَمَّد ﷺ لَا يَرَوْنَ شَيْئاً مِنَ الأَعْمَالِ تَرْكُهُ كُفْرٌ غَيْرَ الصَّلَاةِ. رَوَاهُ التِّرمِذِي فِي كِتَابِ الإِيمَانِ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1080- Ji Şeqîqê kurê 'Ebdullahê Tabi'î ku li ser qencbûna wî îttifaq hatiye kirin (r.), got: Eshabê Muhemmed (s.) ji xeynî nimêjê terikandina tu 'emelî kufir nedidîtin." *Tirmizî di kitêba îman'ê de bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٠٨١ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ أَوَّلَ مَا يُحَاسَبُ بِهِ الْعَبْدُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ مِنْ عَمَلِهِ صَلَاتُهُ، فَإِنْ صَلَحَتْ، فَقَدْ أَفْلَحَ وَأَنْجَحَ، وَإِنْ فَسَدَتْ، فَقَدْ خَابَ

وَخَسِرَ، فَإِنِ انْتَقَصَ مِنْ فَرِيضَتِهِ شَيْئاً، قَالَ الرَّبُّ عَزَّ وَجَلَّ: انْظُرُوا هَلْ لِعَبْدِي مِنْ تَطَوُّعٍ، فَيُكَمَّلُ مِنْهَا مَا انْتَقَصَ مِنَ الْفَرِيضَةِ؟ ثُمَّ يَكُونُ سَائِرُ أَعْمَالِهِ عَلَى هَذَا) رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1081- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman ewilê 'emelê ku wê 'ebd di roja qiyametê de hesabê wê bide, nimêja wî ye. Heger nimêja wî rast be, ew xelas bû û kar kir. Heger ne rast be, ewî winda kiriye û xusiriye. Vêca eger ji ferzên wî tiştek kêm derkeve, Xwedê 'ezze we celle dibêje: Hûn lê binêrin ka sunnetê wî hene? Vêca kêmasiya ferza ji wan sunneta tên temam kirin. Paşê 'emelê wî yê din hemû jî bi vî awayî tên berpirsiyar kirin." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ فَضْلِ الصَّفِّ الأَوَّلِ

## FEZÎLETA SEFA PÊŞÎN Û TIJÎKIRINA SEFAN

١٠٨٢- عَنْ جَابِرِ بْنِ سَمُرَةَ ﷺ قَالَ: خَرَجَ عَلَيْنَا رَسُولُ الله ﷺ فَقَالَ: (أَلَا تُصَفُّونَ كَمَا تُصَفُّ الْمَلَائِكَةُ عِنْدَ رَبِّهَا؟) فَقُلْنَا: يَا رَسُولَ اللَّهِ وَكَيْفَ تُصَفُّ الْمَلَائِكَةُ عِنْدَ رَبِّهَا؟ قَالَ: (يُتِمُّونَ الصُّفُوفَ الأَوَلَ، وَيَتَرَاصُّونَ فِي الصفِّ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1082- Ji Cabirê kurê Semure (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) hate cem me û got: "Çima hûn, wekî sefgirtina milyaketan li cem Rebbê xwe, rast sef nagrin? Me jî got: Ya Pêxemberê Xwedê! Milyaket çawa li cem Rebbê xwe sef digrin? Ewî (s.) got: "Milyaket sefê pêşiyê tijî dikin û di sefê de jî xwe digîhînin hevdu da ku cihê vala nemîne." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٨٣- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَوْ يَعْلَمُ النَّاسُ مَا فِي النِّدَاءِ وَالصَّفِّ الأَوَّلِ، ثُمَّ لَمْ يَجِدُوا إِلَّا أَنْ يَسْتَهِمُوا عَلَيْهِ لاسْتَهَمُوا). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1083- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Heger însanan xêra bangê û sefa pêşiyê bizanîbaya û bes bi pişkkirinê jî cih bidîtana wê dîsa pişk bikirana." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٨٤- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (خَيْرُ صُفُوفِ الرِّجَالِ أَوَّلُهَا، وَشَرُّهَا آخِرُهَا، وَخَيْرُ صُفُوفِ النِّسَاءِ آخِرُهَا، وَشَرُّهَا أَوَّلُهَا). رَوَاهُ مُسْلِم.

1084- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xêrtirînê sefên mêran, sefên pêşyê ne û xirabtirînê sefên wan jî, yên paşiyê ne. Û xêrtirînê sefên jinan jî sefên paşiyê ne û xirabtirînê sefên wan jî, yên pêşyê ne." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٨٥- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ رَأَى فِي أَصْحَابِهِ تَأَخُّراً، فَقَالَ لَهُمْ: (تَقَدَّمُوا فَأْتَمُّوا بِي، وَلْيَأْتَمَّ بِكُمْ مِنْ بَعْدِكُمْ، لَا يَزَالُ قَوْمٌ يَتَأَخَّرُونَ حَتَّى يُؤَخِّرَهُمُ اللَّهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1085- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) di nav eshabên xwe de dît ku hinek paş de sef digrin, ji wan re got: "Pêşda werin, bikevin pey min û bila kesê li pey we jî bikevin pey we. Civateke şûnde bimîne bidom wê her hebe heta ku Xwedê jî ewan şûnde bixe." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٨٦- وَعَنْ أَبِي مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَمْسَحُ مَنَاكِبَنَا فِي الصَّلَاةِ، وَيَقُولُ: (اِسْتَوُوا وَلَا تَخْتَلِفُوا فَتَخْتَلِفَ قُلُوبُكُمْ، لِيَلِنِي مِنْكُمْ أُولُو الأَحْلَامِ وَالنُّهَى، ثُمَّ الَّذِينَ يَلُونَهُمْ، ثُمَّ الَّذِينَ يَلُونَهُمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1086- Ji Ebû Mes'ûdê (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) di nimêjê de destê xwe dida ser milê me û digot: Hûn xwe serast bikin û tevliheviyê çênekin, heta ku qelbê we jî tevlihev bibe. Bila rûspî û aqilmendên we li pey min bisekinin, paşê jî yê ku ji wan kêmtir, paşê ji bi vê rêzê." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٨٧- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (سَوُّوا صُفُوفَكُمْ، فَإِنَّ تَسْوِيَةَ الصَّفِّ مِنْ تَمَامِ الصَّلَاةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ لِلْبُخَارِي: (فَإِنَّ تَسْوِيَةَ الصُّفُوفِ مِنْ إِقَامَةِ الصَّلَاةِ).

1087-Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn sefên xwe serast bikin. Lewra serastiya sefan ji temamê nimêjê ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di seneda Buxarî de: Lewra serastiya sefan ji kirina nimêjê ye.

١٠٨٨- وَعَنْهُ قَالَ: أُقِيمَتِ الصَّلَاةُ، فَأَقْبَلَ عَلَيْنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِوَجْهِهِ فَقَالَ: (أَقِيمُوا صُفُوفَكُمْ وَتَرَاصُّوا، فَإِنِّي أَرَاكُمْ مِنْ وَرَاءِ ظَهْرِي). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

وَفِي رِوَايَةٍ لِلْبُخَارِي: وَكَانَ أَحَدُنَا يُلْزِقُ مَنْكِبَهُ بِمَنْكِبِ صَاحِبِهِ وَقَدَمَهُ بِقَدَمِهِ.

1088- Dîsa ji wî (r.), got: Qameta nimêjê hate kirin. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) berê xwe da me û got: “Sefên xwe serast bikin û xwe bigîhînin hevdu. Lewra ez we li pişt xwe ve dibînim.” *Buxarî riwayet kiriye.*

Di senedeke Buxarî de: Her yek ji me milê xwe bi milê hevalê xwe ve û piyê xwe jî bi piyê hevalê xwe ve dizeliqand.

١٠٨٩- وَعَنِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (لَتُسَوُّنَّ صُفُوفَكُمْ، أَوْ لَيُخَالِفَنَّ الله بَيْنَ وُجُوهِكُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ كَانَ يُسَوِّي صُفُوفَنَا، حَتَّى كَأَنَّمَا يُسَوِّي بِهَا الْقِدَاحَ، حَتَّى رَأَى أَنَّا قَدْ عَقَلْنَا عَنْهُ، ثُمَّ خَرَجَ يَوْماً فَقَامَ حَتَّى كَادَ يُكَبِّرُ، فَرَأَى رَجُلاً بَادِياً صَدْرُهُ مِنَ الصَّفِّ، فَقَالَ: (عِبَادَ الله، لَتُسَوُّنَّ صُفُوفَكُمْ، أَوْ لَيُخَالِفَنَّ الله بَيْنَ وُجُوهِكُمْ).

1089- Ji Nu‘manê kurê Beşîr (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Sond dixwim hûn dê sefê xwe rast bikin û yan jî wê Xwedê te‘ala tefrîqê bike neqeba we.” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

Di senedeke Muslim de: Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) wekî tîran sefê me serast dikir, heta ku em ji wî hîn bûn. Paşê Pêxemberê Xwedê (s.) rojekê derket hat û hindik mabû ku tekbîra nimêjê bîne dît ku wê singa mirovekî ji sefa nimêjê derketiye bel bûye. Vêca ewî (s.) got: “Gelî bendeyên Xwedê! Divê ku hûn sefê xwe serast bikin, û yan jî wê Xwedê te‘ala îxtilafê bixe neqeba we.”

١٠٩٠- وَعَنِ الْبَرَاءِ بْنِ عَازِبٍ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ الله ﷺ يَتَخَلَّلُ الصَّفَّ مِنْ نَاحِيَةٍ إِلَى نَاحِيَةٍ يَمْسَح صُدُورَنَا، وَمَنَاكِبَنَا، وِيقُولُ: (لَا تَخْتَلِفُوا فَتَخْتَلِفُ قُلُوبُكُمْ) وَكَانَ يَقُولُ: (إِنَّ الله وَمَلَائِكَتَهُ يُصَلُّونَ عَلَى الصُّفُوفِ الأُوَلَى). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

1090- Ji Bera‘ê kurê ‘Azib (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) dikete navbera

sefa ji aliyekî heta aliyê din digeriya û destê xwe dida sîng û sermilê me û wiha digot: “Hûn tevliheviyê çênekin, da ku qelbê we jî tevlihev nebe.” Û wiha jî digot: “Xwedê û milyaketên wî ji bo sefê pêşyê duakar in.” *Ebû Dawûd bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

١٠٩١- وعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (أَقِيمُوا الصُّفُوفَ، وَحَاذُوا بَيْنَ الْمَنَاكِبِ، وَسُدُّوا الْخَلَلَ، وَلِينوا بأَيْدِي إخْوَانِكُمْ، وَلَا تَذَرُوا فُرُجَات لِلشيْطانِ، وَمَنْ وَصَلَ صَفّاً وَصَلَهُ اللَّهُ، وَمَنْ قَطَعَ صَفّاً قَطَعَهُ الله). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1091- Ji Îbnu ‘Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn sefê xwe serast bikin, sermilê xwe bînin rêz/tûşa hevdu, valahiyan tijî bikin, (ji bo sef serrastkirinê) bi nermî destê birayê xwe yê misilman bigrin û ji bo şeytan tu valahiyan nehêlin. Û kesê sefê bigîhîne hevdu Xwedê jî ewî digîhîne xêra wê û kî jî bibe sedemê ji hevdu vekirina sefa wê Xwedê jî rehma xwe jê bibire.” *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٠٩٢- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (رُصُّوا صُفُوفَكُمْ، وَقَارِبُوا بَيْنَهَا، وَحاذُوا بِالأَعْنَاقِ، فَوَالَّذِي نَفْسِي بِيدِهِ إِنِّي لَأَرَى الشَّيْطَانَ يَدْخُلُ مِنْ خَلَلِ الصَّفِّ، كَأَنَّهَا الْحَذَفُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بإِسْنَادٍ عَلَى شَرْطِ مُسْلِم.

1092- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn sefê xwe hevbend bikin, navbera wan nêzîkî hevdu bikin û sermile xwe bînin tûşa hevdu. Ez bi wî Xwedayê ku nefsa min bi destê wî ye sond dixwim ku ez dibînim di cihê vekirî de şeytan wekî peza reş dikeve sefê.” *Ebû Dawûd bi senedeke li gor şertê Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٩٣- وَعَنْهُ، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (أَتِمُّوا الصَّفَّ الْمُقَدَّمَ، ثُمَّ الَّذِي يَلِيهِ، فَمَا كَانَ مِنْ نَقْصٍ فَلْيَكُنْ فِي الصَّفِّ المُؤَخَّرِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

1093- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn sefa pêşîn tijî bikin, paşê sefa pey wê. Û bila kêmasî bes di sefa paşîn de çêbibe.” *Ebû Dawûd bi senedek hesen rîwayet kiriye.*

  

١٠٩٤- وَعَنْ عَائِشَةَ، ، قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ اللَّهَ وَمَلَائِكَتَهُ يُصَلُّونَ عَلَى مَيَامِنِ الصُّفُوفِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ عَلَى شَرْطِ مُسْلِمٍ.

1094- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedê û milyaketên wî ji bo kesên di aliyê rastê sefan de nimêj dikin duakar in." *Ebû Dawûd bi senedeke li gor şertê Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٩٥- وَعَنِ الْبَرَاءِ  قَالَ: كُنَّا إِذَا صَلَّيْنَا خَلْفَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَحْبَبْنَا أَنْ نَكُونَ عَنْ يَمِينِهِ، يُقْبِلُ عَلَيْنَا بِوَجْهِهِ، فَسَمِعْتُهُ يَقُولُ: (رَبِّ قِنِي عَذَابَكَ يَوْمَ تَبْعَثُ -أَوْ تَجْمَعُ- عِبَادَكَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1095- Ji Bera (r.), got: Wextê me li pey Pêxemberê Xwedê (s.) nimêj dikir me dixwest ku em bikevine aliyê wî yê rastê, ewî (s.) bi rûyê xwe berê xwe dida me û min ji wî (s.) seh kir, wiha digot:"Rebbê min! Tu, di roja ku tu yê bendeyê xwe rabikî –yan jî kom bikî– ji bo heşrê, min ji 'ezabê xwe biparêzî." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٩٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ  قَالَ: قالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (وَسِّطُوا الإِمَامَ، وَسُدُّوا الْخَلَلَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد.

1096- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn îmam bikin navenda xwe û valahiyan tijî bikin." *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ السُّنَنِ الرَّاتِبَةِ مَعَ الْفَرَائِضِ

## FEZÎLETA SUNNETÊ REWATIB YÊN LI PEY NIMÊJÊN FERZ

١٠٩٧- عَنْ أُمِّ الْمُؤْمِنِينَ أُمِّ حَبِيبَةَ رَمْلَةَ بِنْتِ أَبِي سُفْيَانَ  قَالَتْ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (مَا مِنْ عَبْدٍ مُسْلِمٍ يُصَلِّي لِلهِ تَعَالَى كُلَّ يَوْمٍ ثِنْتَيْ عَشْرَةَ رَكْعَةً تَطَوُّعاً غَيْرَ الْفَرِيضَةِ، إِلَّا بَنَى الله لَهُ بَيْتاً فِي الْجَنَّةِ -أَوْ -إِلَّا بُنِيَ لَهُ بَيْتٌ فِي الْجَنَّةِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1097- Ji dayika mu'minan Ummu Hebîbe Remleya keça Ebû Sufyan (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Çiqas 'ebdê mu'min ku di her rojê de ji xeynê ferzan duwazdeh rekat nimêjên sunnet bike, miheqeq wê Xwedê di cennetê de ji wî re malekê ava bike û yan jî

wê jê re di cennetê de malek bê avakirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٠٩٨- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: صَلَّيْتُ مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ رَكْعَتَيْنِ قَبْلَ الظُّهْرِ، وَرَكْعَتَيْنِ بَعْدَهَا، وَرَكْعَتَيْنِ بَعْدَ الْجُمُعَةِ، وَرَكْعَتَيْنِ بَعْدَ الْمَغرِبِ، وَرَكْعَتَيْنِ بَعْدَ الْعِشَاءِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1098- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Min digel Pêxemberê Xwedê (s.) du rekat pêşya nimêja nîvro û du rekat jî piştî wê, du rekat piştî nimêja înê, du rekat piştî nimêja êvarê û du rekat jî piştî nimêja 'eşayê kir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٠٩٩- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مُغَفَّلٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (بَيْنَ كُلِّ أَذَانَيْنِ صَلاَةٌ، بَيْنَ كُلِّ أَذَانيْنِ صَلاَةٌ، بَيْنَ كُلِّ أَذَانَيْنِ صَلاَةٌ) قَالَ فِي الثَّالِثَةِ: (لِمَنْ شَاءَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1099- Ji 'Ebdullahê kurê Muxeffel (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Di navbera du bangan –bang û qamet– de nimêj heye. Di navbera du bangan de nimêj heye. Di navbera du bangan de nimêj heye." Di cara sêyem de got: "Ji bo kesê bivê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ تَأْكِيد رَكْعَتَيْنِ سُنَّةِ الصُّبْحِ

## MUEKKEDBÛNA HER DU REKATÊN SUNNETÊ NIMÊJA SIBEHÊ

١١٠٠- عَنْ عَائِشَةَ، ﷺ، أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ لَا يَدَعُ أَرْبَعاً قَبْلَ الظُّهْرِ، وَرَكْعَتَيْنِ قَبْلَ الغَدَاةِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1100- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) çar rekatên beriya nimêja nîvro û her du rekatên beriya nimêja sibehê neterikandiye." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١١٠١- وَعَنْهَا قَالَتْ: لَمْ يَكُنِ النَّبِيُّ ﷺ عَلَى شَيْءٍ مِنَ النَّوَافِلِ أَشَدَّ تَعَاهُداً مِنْه عَلَى رَكْعَتَي الْفَجْرِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1101- Dîsa ji wê (r.), got: Pêxember (s.) di nav nimêjên sunnet de zêdetir

  

ehemmiyet dida her du rekatên beriya nimêja sibehê. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٠٢- وَعَنْهَا عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (رَكْعَتَا الْفَجْرِ خَيْرٌ مِنَ الدُّنْيَا وَمَا فِيهَا). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ: (لَهُمَا أَحَبُّ إِلَيَّ مِنَ الدُّنْيَا جَمِيعاً).

1102- Dîsa ji wê (r.), ji Pêxember (s.) got: "Her du rekatên pêşiya nimêja sibehê ji dunyayê û ji tiştê te de xêrtir e." *Buxarî rîwayet kiriye.*

Di senedeke Muslim de: "Her du rekatên pêşiya nimêja sibehê li bal min xweştire ji dunyayê hemûkî."

١١٠٣- وَعَنْ أَبِي عَبْدِ اللَّهِ بِلَالِ بْنِ رَبَاحٍ ﷺ مُؤَذِّنِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ: أَنَّهُ أَتَى رَسُولَ اللهِ ﷺ لِيُؤْذِنَهُ بِصَلَاةِ الْغَدَاةِ، فَشَغَلَتْ عَائِشَةَ بِلَالاً بِأَمْرٍ سَأَلَتْهُ عَنْهُ، حَتَّى أَصْبَحَ جِدّاً، فَقَامَ بِلَالٌ فَآذَنَهُ بِالصَّلَاةِ، وَتَابَعَ أَذَانَهُ، فَلَمْ يَخْرُجْ رَسُولُ اللهِ ﷺ فَلَمَّا خَرَجَ صَلَّى بِالنَّاسِ، فَأَخْبَرَهُ أَنَّ عَائِشَةَ شَغَلَتْهُ بِأَمْرٍ سَأَلَتْهُ عَنْهُ حَتَّى أَصْبَحَ جِدّاً، وَأَنَّهُ أَبْطَأَ عَلَيْهِ بِالْخُرُوجِ، فَقَالَ -يَعْنِي النَّبِيَّ ﷺ-: (إِنِّي كُنْتُ رَكَعْتُ رَكْعَتَي الفَجْرِ) فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنَّكَ أَصْبَحْتَ جِدّاً قَالَ: (لَوْ أَصْبَحْتُ أَكْثَرَ مِمَّا أَصْبَحْتُ، لَرَكَعْتُهُمَا، وَأَحْسَنْتُهُمَا، وَأَجْمَلْتُهُمَا). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

1103- Ji Ebû 'Ebdullah Bilalê kurê Rebah (r.), bangbêje Pêxemberê Xwedê (s.) hatiye rîwayetkirin ku ew hate bal Pêxemberê Xwedê (s.) da ku banga nimêja sibehê bide. Vêca 'Aîşe (r.) Bilal bi tiştekî ku jê xwestibû ew mijûl kir heta derûdor tam gewr bû. Paşê Bilal rabû û banga nimêjê da. Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) nehat Bilalê Hebeşî bang tekrar kir. Vêca wextê Pêxemberê Xwedê (s.) derket hat bi însanan nimêj da kirin. Bilal, agahî da Pêxemberê Xwedê (s.) ku Hz. 'Aîşê bi tiştekî ku jê xwestiye ew mijûl kiriye heta ku derûdor jî tam gewr dibe û ku ew ji bo vê yekê dereng dimîne. Li ser vê Pêxember (s.) got: "Min jî her du rekatên beriya nimêja sibehê dikir." Vêca Bilal got: Ya Pêxemberê Xwedê, bi rastî hûn dereng man? Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Ez zêdetir dereng bimama jî minê dîsa ew her du rekat bi awakî rind bikira û hê paşê ezê derketibama." *Ebû Dawûd bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَخْفِيف رَكْعَتَيْ الْفَجْرِ

## SIVIKKIRINA HER DU REKATÊN SUNNETÊ NIMÊJA SIBEHÊ

١١٠٤- عَنْ عَائِشَةَ ﵂، أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يُصَلِّي رَكْعَتَيْنِ خَفِيفَتَيْنِ بَيْنَ النِّدَاءِ وَالإِقَامَةِ مِنْ صَلَاةِ الصُّبْحِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُمَا: يُصَلِّي رَكْعَتَي الْفَجْرِ، إِذَا سَمِعَ الأَذَانَ فَيُخَفِّفْهُمَا حَتَّى أَقُولَ: هَلْ قَرَأَ فِيهِمَا بِأُمِّ الْقُرْآنِ.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: كَانَ يُصَلِّي رَكعَتَي الْفَجْرِ إِذَا سَمِعَ الأَذَانَ وَيُخَفِّفُهُمَا. وَفِي رِوَايَةٍ: إِذَا طَلَعَ الفَجْر.

1104- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) di navbera bang û qameta nimêja sibehê de du rekatên sivik dikir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di senedeke wan her duyan de: Pêxember (s.) her du rekatên beriya nimêja sibehê dikir, wextê bang dibihîst û ew rekatana wisa sivik dikirin min bixwe ji xwe re digot: Gelo sûretê Fatihê xwend.

Di senedeke Muslim de: Pêxember (s.) her du rekatên beriya nimêja sibehê dikir, wextê bang dibihîst ew rekatana sivik dikirin.

Di senedekê de jî: Wextê şefeqa sibehê diavêt.

١١٠٥- وَعَنْ حَفْصَةَ ﵂، أَنَّ رَسُولَ اللَّهُ ﷺ كَانَ إِذَا أَذَّنَ الْمُؤَذِّنُ لِلصُّبْحِ، وبَدَا الصُّبْحُ، صَلَّى رَكْعَتَيْنِ خَفِيفَتَيْنِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: كَانَ رَسُولُ اللهِ ﷺ إِذَا طَلَعَ صَلَّى الْفَجْرَ لَا يُصَلِّي إِلَّا رَكْعَتَيْنِ خَفِيفَتَيْنِ.

1105- Ji Hefse (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wextê bangbêj banga sibehê dixwend û şefeqa sibehê derdiket, du rekatên sivik nimêj dikir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di senedeke Muslim de: Wextê şefeqa sibehê biavêta du rekatên sivik beriya nimêja sibehê dikir.

١١٠٦- وعَنِ اِبْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُصَلِّي مِنَ اللَّيْلِ مَثْنَى مَثْنَى، وَيُوتِرُ بِرَكْعَةٍ مِنْ آخِرِ اللَّيْلِ وَيُصَلِّي الرَّكْعَتَيْنِ قَبْلَ صَلَاةِ الْغَدَاةِ، وَكَأَنَّ الأَذَانِ بِأُذُنَيْهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1106- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) bi şev du rekat nimêj dikir û dûmayîka şevê jî rekatek tenê dikir. Û du rekat jî beriya nimêja sibehê dikir, her wekî bang hê hate xwendin di her du guhê wî de. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١١٠٧- وَعَنِ اِبْنِ عَبَّاسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ كَانَ يَقْرَأُ فِي رَكْعَتَي الْفَجْرِ فِي الأُولَى مِنْهُمَا: ﴿قُولُوا آمَنَّا بِاللَّهِ وَمَا أُنزِلَ إِلَيْنَا.... الآيَةُ الَّتِي فِي الْبَقَرَةِ﴾ وَفِي الآخِرَةِ مِنْهُمَا: ﴿آمَنَّا بِاللَّهِ وَاشْهَدْ بِأَنَّا مُسْلِمُونَ﴾

وَفِي رِوَايَةٍ: فِي الآخِرَةِ الَّتِي فِي آلِ عِمْرَانَ: ﴿تَعَالَوْا إِلَى كَلِمَةٍ سَوَاءٍ بَيْنَنَا وبَيْنَكُمْ﴾ رَوَاهُمَا مُسْلِم.

1107- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) di her du rekatên nimêja sibehê de: Ya yekem de ev ayeta (136) sûretê Beqere de: ﴿قُولُوا آمَنَّا بِاللَّهِ وَمَا أُنزِلَ إِلَيْنَا﴾, û ya duyem de jî (ev ayeta 52 sûretê Alî 'Îmran): ﴿آمَنَّا بِاللَّهِ وَاشْهَدْ بِأَنَّا مُسْلِمُونَ﴾ dixwend.

Di senedekê de: Di rekata dawiyê de ev ayeta (64) sûretê Alî 'Îmran: ﴿تَعَالَوْا إِلَى كَلِمَةٍ سَوَاءٍ بَيْنَنَا وبَيْنَكُمْ﴾ dixwend. *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٠٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَرَأَ فِي رَكْعَتَي الْفَجْرِ: (قُل يَا أَيُّهَا الْكَافِرُونَ) و (قُلْ هُوَ اللَّهُ أَحَدٌ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1108- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) di her du rekatên nimêja sibehê de (sûretê Kafirûn): ﴿قُل يَا أَيُّهَا الْكَافِرُونَ﴾ û (sûretê Îxlasê) ﴿قُلْ هُوَ اللَّهُ أَحَدٌ﴾ dixwend. *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٠٩- وَعَنِ اِبْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: رَمَقْتُ النَّبِيَّ ﷺ شَهْراً وَكَانَ يَقْرَأُ فِي الرَّكْعَتَيْنِ قَبْلَ

الْفَجْرِ: (قُلْ يَا أَيُّهَا الْكَافِرُونَ) وَ (قُلْ هُوَ اللَّهُ أَحَد). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

1109- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Min mehekê bala xwe da Pêxember (s.), ewî (s.) di her du rekatên beriya nimêja sibehê de (sûretê Kafirûn): ﴿قُلْ يَا أَيُّهَا الْكَافِرُونَ﴾ û (sûretê Îxlasê) ﴿قل هُوَ اللَّهُ أَحَد﴾ dixwend. *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ إِسْتِحْبَاب الإضْطِجَاع بَعْدَ رَكْعَتَي الْفَجْرِ

## MUSTEHEBBÛNA XWEDIRÊJKIRINA LI SER KÊLEKA RASTÊ PIŞTÎ HER DU REKATÊN NIMÊJA SIBEHÊ

١١١٠- عَنْ عَائِشَةَ، ﷺ قَالَتْ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ إِذَا صَلَّى رَكْعَتَي الفَجْرِ، اِضْطَجَعَ عَلَى شِقِّهِ الأَيْمَنِ. رَوَاهُ البُخَارِي.

1110- Ji 'Aîşe (r.), got: Wextê Pêxember (s.) her du rekatên nimêja sibehê dikirin, xwe li ser kêleka xwe ya rastê dirêj dikir. *Buxarî rîwayet kiriye.*

١١١١- وَعَنْهَا قَالَتْ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يُصَلِّي فِيمَا بَيْنَ أَنْ يَفْرُغَ مِنْ صَلَاةِ الْعِشَاءِ إِلَى الْفَجْرِ إِحْدَى عَشَرَةَ رَكْعَةً، يُسَلِّمُ بَيْنَ كُلِّ رَكْعَتَيْنِ، وَيُوتِرُ بِوَاحِدَةٍ، فَإِذَا سَكَتَ الْمُؤَذِّنُ مِنْ صَلَاةِ الْفَجْرِ، وَتَبَيَّنَ لَهُ الْفَجْرُ، وَجَاءَهُ الْمُؤَذِّنُ، قَامَ فَرَكَعَ رَكْعَتَيْنِ خَفِيفَتَيْنِ، ثُمَّ اِضْطَجَعَ عَلَى شِقِّهِ الأَيْمَنِ هَكَذَا حَتَّى يَأْتِيَهُ الْمُؤَذِّنُ لِلإِقَامَةِ. رَوَاهُ مُسْلِم.

1111- Dîsa ji wê (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wextê ji kirina nimêja 'eşayê vala dibû heta şefeqê yanzdeh rekat nimêj dikir. Di navbera her du rekatan de silav dida û bi rekatekê jî wîtir dikir. Wextê bangbêj ji banga nimêja sibehê radiwestiya û derûdor tam gewr dibû bangbêj dihate bal û ew (s.) radibû du rekatên sivik dikirin. Û paşê jî xwe li ser kêleka xwe ya rastê dirêj dikir heta ku bangbêj ji bo qametê dihate bal. *Muslim rîwayet kiriye.*

١١١٢- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا صَلَّى أَحَدُكُمْ رَكْعَتَي الْفَجْرِ، فَلْيَضْطَجِعْ عَلَى يَمِينِهِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرمِذِي. بِأَسَانِيدِ صَحِيحَةٍ.

1112- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê yekî ji we her du rekatên nimêja sibehê kir bila xwe li ser kêleka xwe ya rastê dirêj bike." *Ebû Dawûd û Tirmizî bi senedeke sehîh rîwayet kirine.*

## بَابُ سُنَّةِ الظُّهْرِ

## SUNNETÊN NIMÊJA NÎVRO

١١١٣-عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: صَلَّيْتُ مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ رَكْعَتَيْنِ قَبْلَ الظُّهْرِ، وَرَكْعَتَيْنِ بَعْدَهَا. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1113- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Min digel Pêxemberê Xwedê (s.) du rekat beriya nimêja nîvro û du rekat jî piştî nimêja nîvro kir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١١٤- وَعَنْ عَائِشَةَ، ﷺ، أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ لَا يَدَعُ أَرْبَعاً قَبْلَ الظُّهْرِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1114- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) her çar rekatên beriya nimêja nîvro qet nediterikand. *Buxarî rîwayet kiriye.*

١١١٥- وَعَنْهَا قَالَتْ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يُصَلِّي فِي بَيْتِي قَبْلَ الظُّهْرِ أَرْبَعاً، ثُمَّ يَخْرُجُ، فَيُصَلِّي بِالنَاسِ، ثُمَّ يَدْخُلُ فَيُصَلِّي رَكْعَتَيْنِ، وَكَانَ يُصَلِّي بِالنَّاسِ المَغْرِبَ، ثُمَّ يَدْخُلُ فَيُصَلِّي رَكْعَتَيْنِ، وَيُصَلِّي بِالنَاسِ الْعِشَاءَ، وَيَدْخُلُ بَيْتِي، فَيُصَلِّي رَكْعَتَيْنِ. رَوَاهُ مُسْلِم.

1115- Dîsa ji wê (r.), got: Pêxember (s.) di mala min de beriya nimêja nîvro çar rekat dikir û paşê derdiket bi însanan re nimêja nîvro bi cema'etî dikir. Piştre dihate malê û du rekat dîsa dikir. Bi însanan re nimêja êvarê bi cema'etî dikir, paşê dihate malê du rekat dikir. Û nimêja 'eşayê jî bi însanan re bi cema'etî dikir û piştre dihate mala min, du rekat sunnet dikir. *Muslim rîwayet kiriye.*

١١١٦- وَعَنْ أُمِّ حَبِيبَةَ، ﷺ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (مَنْ حَافَظَ عَلَى أَرْبَعِ رَكَعَاتٍ قَبْلَ الظُّهْرِ، وَأَرْبَعٍ بَعْدَهَا، حَرَّمَهُ اللَّهُ عَلَى النَّارِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1116- Ji Ummu Hebîbe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê her çar rekatên beriya nimêja nîvro û her çar rekatên piştî wê bidom bike wê Xwedê ewî heram bike li ser êgir." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١١١٧- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ السَّائِبِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يُصَلِّي أَرْبَعاً بَعْدَ أَنْ تَزُولَ

الشَّمْسُ قَبْلَ الظُّهْرِ، وَقَالَ: (إِنَّهَا سَاعَةٌ تُفْتَحُ فِيهَا أَبْوَابُ السَّمَاءِ، فَأُحِبّ أَنْ يَصْعَدَ لِي فِيهَا عَمَلٌ صَالِحٌ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1117- Ji ‘Ebdullahê kurê Sa’îb (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) piştî wextê zewala rojê û beriya nimêja nîvro çar rekat dikir û wiha digot: “Ev wexta, wextê vebûna deryê asîmana ye. Vêca ez hez dikim di vî wextî de kiryarekî minê baş bilindî jorê be.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

١١١٨- وَعَنْ عَائِشَةَ، ﵂، أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ إِذَا لَمْ يُصَلِّ أَرْبَعاً قَبْلَ الظُّهْرِ، صَلاَّهُنَّ بَعْدَهَا. رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1118- Ji ‘Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) wextê çar rekatên sunnet beriya nimêja nîvro nekira piştî wê dikir. *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ سُنَّةِ الْعَصْرِ
## SUNNETÊN NIMÊJA ESRÊ

١١١٩- عَنْ عَلِيّ بْنِ أَبِي طَالِبٍ ﵁ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يُصَلِّي قَبْلَ الْعَصْرِ أَرْبَعَ رَكَعَاتٍ، يَفْصِلُ بَيْنَهُنَّ بِالتَّسْلِيمِ عَلَى المَلاَئِكَةِ الْمُقَرَّبِينَ، وَمَنْ تَبِعَهُمْ مِنَ الْمُسْلِمِينَ وَالْمُؤْمِنِينَ. رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1119- Ji ‘Eliyê kurê Ebû Talib (r.), got: Pêxember (s.) beriya nimêja ‘esrê çar rekat nimêj dikir û neqeba wan bi silava li ser milyaketên muqerrebîn û kesê li pey wan diçe ji misilman û mu’minan vediqetand. *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

١١٢٠- وَعنِ ابْنِ عُمَرَ ﵄ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (رَحِمَ الله إِمْرَأً صَلَّى قَبْلَ الْعَصْرِ أَرْبَعاً). رَوَاهُ أَبُو دَاودَ وَالتِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1120- Ji Îbnu ‘Umer (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: “Xwedê rehmê li wî kesî dike ku beriya nimêja esrê çar rekat nimêj dike.” *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

١١٢١- وَعَنْ عَلِيٍّ بْنِ أَبِي طَالِبٍ ﵁: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يُصَلِّي قَبْلَ الْعَصْرِ رَكْعَتَيْنِ.

رَوَاهُ أَبُو دَاوودِ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1121- Ji 'Eliyê kurê Ebû Talib (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) beriya nimêja 'esrê du rekat nimêj dikir. *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

## بَابُ سُنَّةِ الْمَغْرِب

## SUNNETÊN NIMÊJA MEXREBÊ

١١٢٢- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مُغَفَّلٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (صَلُّوا قَبْلَ الْمَغْرِبِ) ثُمَّ قَالَ فِي الثَّالِثَةِ: (لِمَنْ شَاءَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1122- Ji 'Ebdullahê kurê Muxeffel (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Hûn beriya nimêja mexrebê du rekat nimêj bikin." Cara sêyem de got: "Ji bo kesê hez bike." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١١٢٣- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: لَقَدْ رَأَيْتُ كِبَارَ أَصْحَابِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ يبتَدِرُونَ السَّوَارِيَ عِنْدَ الْمَغْرِبِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1123- Ji Enes (r.), got: Min mezinê eshabê Pêxemberê Xwedê (s.) dîtin ku wan beriya nimêja mexrebê lez dikirin bi bal stûnan ve da ku du rekat sunnet bikin. *Buxarî rîwayet kiriye.*

١١٢٤- وَعَنْهُ قَالَ: كُنَّا نُصَلِّي عَلَى عَهْدِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ رَكْعَتَيْنِ بَعْدَ غُرُوبِ الشَّمْسِ قَبْلَ الْمَغْرِبِ، فَقِيلَ: أَكَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ صَلاَّهُمَا؟ قَالَ: كَانَ يَرَانَا نُصَلِّيهِمَا فَلَمْ يَأْمُرْنَا وَلَمْ يَنْهَنَا. رَوَاهُ مُسْلِم.

1124- Dîsa ji wî (r.), got: Me di dewra Pêxemberê Xwedê (s.) de piştî rojavayê û beriya nimêja mexrebê du rekat nimêj dikir. Hate gotin: Pêxemberê Xwedê (s.) jî ew her du rekat dikirin? Enes got: Ewî (s.) em didît ku em wan her du rekatan dikin, lê ne emrê me bi kirina wan kir û ne jî nehya me jê kir. *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٢٥- وَعَنْهُ قَالَ: كُنَّا بِالْمَدِينَةِ فإِذَا أَذَّنَ الْمُؤَذِّنُ لِصَلاَةِ الْمَغْرِبِ اِبْتَدَرُوا السَّوَارِيَ، فَرَكَعُوا رَكْعَتَيْنِ حَتَّى إِنَّ الرَّجُلَ الْغَرِيبَ يُصَلِّيهِمَا. رَوَاهُ مُسْلِم.

1125- Dîsa ji wî (r.), got: Em li Medînê bûn, wextê bangbêj banga nimêja mexrebê bida eshaban lez dikirin bal stûnan ve û du rekat nimêj dikirin. Heta miroveki xerîb û biyanî bihata mizgeftê, ji ber pirbûna nimêjkerê wan her du rekatana, digot qey nimêj hatiye kirin. *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ سُنَّةِ الْعِشَاءِ
## SUNNETÊ NIMÊJA 'EŞAYÊ

فِيهِ حَدِيث ابْنِ عُمَرَ السَّابق: صَلَّيْتُ مَعَ النَّبِيِّ ﷺ ركْعَتَيْنِ بَعْدَ الْعَشَاءِ، وَحَدِيث عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مُغْفَّلٍ: (بَيْنَ كُلِّ أَذَانَيْنِ صَلاَةٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

Di vî derbarî de hedîsa 'Ebdullahê Îbnu 'Umer (r.) ya ku derbas bû: "Min digel Pêxember (s.) piştî nimêja 'eşayê du rekat nimêj kir."

Û hedîsa 'Ebdullahê kurê Muxeffel: "Di navbera her du bangan de (bang û qamet) nimêjek heye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ سُنَّةِ الْجُمُعَةِ
## SUNNETÊ NIMÊJA CUM'Ê/ÎNÊ

– فِيهِ حَدِيثُ ابْنِ عُمَرَ السَّابق أَنَّهُ صَلَّى مَعَ النَّبِيِّ ﷺ رَكعَتَيْنِ بَعْدَ الجُمُعَةِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

Di vî derbarî de hedîsa 'Ebdullahê Îbnu 'Umer (r.) ya ku derbas bû ku ewî digel Pêxember (s.) piştî nimêja înê du rekat nimêj kiriye. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٢٦- وَعَنْ أَبِي هُرِيرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا صَلَّى أَحَدُكُمُ الْجُمُعَةَ، فَلْيُصَلِّ بَعْدَهَا أَرْبَعاً). رَوَاهُ مُسْلِم.

1126- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê yekî ji we nimêja înê kir bila piştî wê çar rekatan bike." *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٢٧- وَعَنِ ابْنِ عُمَر ﷺ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ لَا يُصَلِّي بَعْدَ الْجُمُعَةِ حَتَّى يَنْصَرِفَ، فَيُصَلِّي رَكْعَتَيْنِ فِي بَيْتِهِ. رَوَاهُ مُسْلِم.

1127- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) piştî nimêja înê heta bizviriya malê tu nimêj nedikir. Û piştî ku dihate malê du rekat nimêj di mala xwe de dikir.

  

## بَابُ إِسْتِحْبَاب جَعْل النَّوَافل فِي الْبَيْت
## MUSTEHEBBÛNA KIRINA NIMÊJÊ SUNNET DI MALÊ DE

١١٢٨- عَنْ زَيْدِ بْنِ ثَابِتٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (صَلُّوا أَيُّهَا النَّاسُ فِي بُيُوتِكُمْ، فَإِنَّ أَفْضَلَ الصَّلَاةِ صَلَاةُ الْمَرْءِ فِي بَيْتِهِ إِلَّا الْمَكْتُوبَةَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1128- Ji Zeydê kurê Sabit (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Gelî însanan! Hûn di malên xwe de nimêj bikin. Lewra xêrtirînê nimêjan, ji xeynê nimêja ferz, nimêja şexsê di mala xwe de ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٢٩- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (اِجْعَلُوا مِنْ صَلَاتِكُمْ فِي بُيُوتِكُمْ، وَلَا تَتَّخِذُوهَا قُبُوراً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1129- Ji Îbnu 'Umer (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Hûn hinek nimêjên xwe di malê xwe de bikin û hûn malên xwe nekin goristan." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٣٠- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا قضَى أَحَدُكُمْ صَلَاتَهُ فِي مَسْجِدِهِ، فَلْيَجْعَلْ لِبَيْتِهِ نَصِيباً مِنْ صَلَاتِهِ، فَإِنَّ اللَّهَ جَاعِلٌ فِي بَيْتِهِ مِنْ صَلَاتِهِ خَيْراً). رَوَاهُ مُسْلِم.

1130- Ji Cabir (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê yekî ji we nimêja xwe di mizgeftê de kir bila ji mala xwe re jî parekê bihêle. Lewra Xwedê bi sedem nimêja wî xêr û bereketê dixe mala wî." *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٣١- وَعَنْ عُمَرَ بْنِ عَطَاءٍ أَنَّ نَافِعَ بْنَ جُبَيْرٍ أَرْسَلَهُ إِلَى السَّائِبِ ابْنِ أُخْتِ نَمِر يَسْأَلُهُ عَنْ شَيْءٍ رَآهُ مِنْهُ مُعَاوِيَةُ فِي الصَّلَاةِ فَقَالَ: نَعَمْ، صَلَّيْتُ مَعَهُ الْجُمُعَةَ فِي الْمَقْصُورَةِ، فَلَمَّا سَلَّمَ الإِمَامُ، قُمتُ فِي مَقَامِي، فَصَلَّيْتُ، فَلَمَّا دَخَلَ أَرْسَلَ إِلَيَّ فَقَالَ: لَا تَعُدْ لِمَا فَعَلْتَ. إِذَا صَلَّيْتَ الْجُمُعَةَ، فَلَا تَصِلْهَا بِصَلَاةٍ حَتَّى تَتَكَلَّمَ أَوْ تَخْرُجَ، فَإِنَّ رَسُولَ اللهِ ﷺ أَمَرَنَا بِذَلِكَ، أَنْ لَا نُوصِلَ صَلَاةً بِصَلَاةٍ حَتَّى نتكلَّمَ أَوْ نَخْرُجَ. رَوَاهُ مُسْلِم.

1131- Ji 'Umerê kurê 'Eta (r.), hatiye rîwayetkirin ku Nafi kurê Cubeyr ew şande bal Sa'ibê kurê xuşka Nemr ku ji wî pirsa tiştekî di derbarê nimêjê de Mu'awiye ji wî dîtiye bike. Vêca Sa'ib got: Belê, min di hicrê

de digel Mu'awiye nimêja înê kir. Wextê îmam silav da, ez di cihê xwe de rabûm û min nimêj kir. Wextê kete hundir, mirovek şande bal min û got: Tu careke din wisa neke. Wextê te nimêja înê kir, hema pey wê nimêjeke din, heta ku tu neaxivî û yan jî tu ji cihê ku te tê de nimêj kiriye dernekevî, neke. Lewra Pêxemberê Xwedê (s.) emrê me bi vê kir ku em piştî nimêjekê heta em neaxivin û yan jî ji wî cihê nimêjê dernekevin hema pey wê em nimêjeke din nekin. *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ الْحَثِّ عَلَى صَلَاةِ الْوِتْرِ
## SUNNETA WITRÊ

١١٣٢- عَنْ عَلِيٍّ ﷺ قَالَ: الْوِتْرُ لَيْسَ بِحَتْمٍ كَصَلَاةِ الْمَكْتُوبَةِ، وَلَكِنْ سَنَّ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّ الله وِتْرٌ يُحِبُّ الْوِتْرَ، فَأَوْتِرُوا يَا أَهْلَ الْقُرْآنِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1132- Ji 'Elî (r.), got: Nimêja witrê wekî nimêjên ferzê dîtir ne ferz e. Lêbelê Pêxemberê Xwedê (s.) ew kiriye sunnet. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bêguman Xweda kit e û ji tiştê kit jî hez dike. Vêca gelî ehlê Qur'anê, hûn nimêja witrê kit/fer bikin." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

١١٣٣- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: مِنْ كُلِّ اللَّيْلِ قَدْ أَوْتَرَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ مِنْ أَوَّلِ اللَّيْلِ، وَمِنْ أَوْسَطِهِ، وَمِنْ آخِرِهِ، وَانْتَهَى وِتْرُهُ إِلَى السَّحَرِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1133- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) her şev nimêja witrê dikir; carina ewilê şevê, carina nîvê şevê û carina jî dûmayîka şevê dikir. Û nimêja witrê heta wextê şefeqê xelas dikir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٣٤- وَعَنْ ابْنِ عُمَرَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (اجْعَلُوا آخِرَ صَلَاتِكُمْ بِاللَّيْلِ وِتْراً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1134- ji 'Ebdullahê Îbnu 'Umer (r) ji Pêxember (s.) gotiye (Hûn dûmayîka nimêjên xwe yên bi şev kit bikin) *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٣٥- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِي ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (أَوْتِرُوا قَبْلَ أَنْ تُصْبِحُوا). رَوَاهُ مُسْلِم.

1135- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye. "Beriya derketina şefeqê hûn nimêja witrê bikin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٣٦- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يُصَلِّي صَلاَتَهُ بِاللَّيْلِ، وَهِيَ مُعْتَرِضَةٌ بَيْنَ يَدَيْهِ، فَإِذَا بَقِيَ الْوِتْرُ، أَيْقَظَهَا فَأَوْتَرتْ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: فَإِذَا بَقِيَ الْوِتْر قَالَ: (قُومِي فَأَوْتِرِي يَاعَائِشَةَ).

1136- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) nimêja şevê dikir û ewê jî li pêşya wî (s.) xwe dirêj dikir. Wextê nimêja witrê bima Pêxemberê Xwedê (s.) ew jî hişyar dikir, vêca radibû nimêja witrê dikir. *Muslim rîwayet kiriye.*

Di senedekê de: Wextê nimêja witrê bima, Pêxemberê Xwedê (s.) digot: "Ya 'Aîşe! Rabe û nimêja witrê bike."

١١٣٧- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (بَادِرُوا الصُّبْحَ بِالْوِتْرِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1137- Ji Îbnu 'Umer (r.), hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Hûn beriya şefeqê lez bikin ji bo kirina nimêja witrê." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١١٣٨- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ خَافَ أَنْ لَا يَقُومَ مِنْ آخِرِ اللَّيْلِ، فَلْيُوتِرْ أَوَّلَهُ، وَمَنْ طَمِعَ أَنْ يَقُومَ آخِرَهُ فَلْيُوتِرْ آخِرَ اللَّيْلِ، فَإِنَّ صَلاَةَ آخِرِ اللَّيْلِ مَشْهُودَةٌ، وَذَلِكَ أَفْضَلُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1138- Ji Cabirê kurê 'Ebdullah (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê bitirse ku dûmayîka şevê de hişyar nebe bila di serê şevê de nimêja witrê bike û kesê hêvîdar be ku wê di dûmayîka şevê de hişyar be bila di dûmayîka şevê de nimêja witrê bike. Lewra nimêja dûmayîka şevê meşhûde (milyaket amadeyê wê dibin) ye û ev jî xêrtir e." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ صَلاَةِ الضُّحَى

## NIMÊJA DUHAYÊ

١١٣٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: أَوْصَانِي خَلِيلِي ﷺ بِصِيَامِ ثَلاَثَةِ أَيَّامٍ مِنْ كُلِّ شَهْرٍ، وَرَكْعَتَي الضُّحَى، وَأَنْ أُوتِرَ قَبلَ أَنْ أَرْقُدَ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1139- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Dostê min Hz. Muhemmed (s.) şîret li min kir bi rojîgirtina sê rojan ji her mehê, bi kirina du rekat nimêja duhayê û yek jî beriya ku ez razêm nimêja witrê bikim. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٤٠- وَعَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (يُصْبِحُ عَلَى كُلِّ سُلاَمَيْ مِنْ أَحَدِكُمْ صَدَقَةٌ، فَكُلُّ تَسْبِيحَةٍ صَدَقَةٌ، وَكُلُّ تَحْمِيدَةٍ صَدَقَةٌ، وَكُلُّ تَهْلِيلَةٍ صَدَقَةٌ، وَكُلُّ تَكْبِيرَةٍ صَدَقَةٌ، وَأَمرٌ بِالْمَعْرُوفِ صَدَقَة، وَنَهْي عَنِ الْمُنْكَرِ صَدَقَةٌ، وَيَجْزئ مِنْ ذَلِكَ رَكْعَتَانِ يَرْكَعُهُمَا مِنَ الضُّحَى). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1140- Ji Ebû Zerrê Xiffarî (r.), ji Pêxember (s.) got: "Di sibehê de li ser her movikeke we sedeqeyek heye: Her tesbîhek "subhanellah", her tehmîdek "elhemdu lîllah", her tehlîlek "La îlahe îllellah" sedeqe ye. Emrê bi qenciyê sedeqe ye û nehya ji xirabiyê sedeqe ye. Lê du rekatên nimêja piştî tavderketinê/nimêja duhayê dikeve ber van hemûyan." *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٤١- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ، قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُصَلِّي الضُّحَى أَرْبَعاً، وَيَزِيدُ مَا شَاءَ الله. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1141- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) nimêja duhayê çar rekat dikir û çiqas bixwesta jî zêde dikir. *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٤٢- وَعَنْ أُمِّ هَانِئ فَاخِتَةَ بِنْتِ أَبِي طَالِبٍ، ﷺ، قَالَتْ: ذَهَبْتُ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ عَامَ الْفَتْحِ فَوَجَدْتُهُ يَغْتَسِلُ، فَلَمَا فَرَغَ مِنْ غُسْلِهِ صَلَّى ثَمَانِيَ رَكَعَاتٍ، وَذَلِكَ ضُحَى. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1142- Ji Ummu Hanî Faxite ya keça Ebû Talib (r.), got: Ez wextê fetha Mekkeyê de çûm cem Pêxemberê Xwedê (s.), min ew dît ku ewî serê xwe dişûşt. Piştî ku serê xwe şûşt heşt rekat nimêj kir ku ew nimêj jî nimêja duhayê bû. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

  

## بَابُ تَجْوِيزِ صَلاَةِ الضُّحَى مِنْ إِرْتِفَاعِ الشَّمْسِ إِلَى زَوَالِهَا
## CAIZBÛNA KIRINA NIMÊJA DUHAYÊ JI BILINDBÛNA ROJÊ HETA ZEWALÊ

١١٤٣- عَنْ زَيْدِ بْنِ أَرْقَمَ ﷺ أَنَّهُ رَأَى قَوْماً يُصلُّونَ مِنَ الضُّحَى، فَقَالَ: أَمَا لَقَدْ عَلِمُوا أَنَّ الصَّلاَةَ فِي غَيْرِ هَذِهِ السَّاعَةِ أفْضَلُ، إِنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: صَلاَةُ الأَوَّابِينَ حِينَ تَرْمَضُ الْفِصَالُ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1143- Ji Zeydê kurê Erqam (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî komek mirovê ku nimêja duhayê dikirin dît. Vêca ji wan re got: Miheqeq ew jî dizanin ku nimêja duhayê ya di xeynê vî wextî de xêrtir e. Lewra Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê nimêja ewwabînê (nimêja duhayê), wextê germbûna lingê torimê hêştira ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ الْحَثِّ عَلَى صَلاَةِ تَحِيَّةِ الْمَسْجِدِ
## NIMÊJA TEHIYYETU L MESCIDÊ

١١٤٤- عَنْ أَبِي قَتَادَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا دَخَلَ أَحَدُكُمُ الْمَسْجِدَ، فَلاَ يَجْلِسْ حَتَّى يُصَلِّيَ رَكْعَتَيْنِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1144- Ji Ebû Qetade (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê yek ji we kete mizgeftê de heta du rekat nimêj neke bila rûnenê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٤٥- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ وَهُوَ فِي الْمَسْجِدِ، فَقَالَ: صَلِّ رَكْعَتَيْنِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1145-Ji Cabir (r.), got: Ez hatim bal Pêxemberê Xwedê (s.) ku ew jî di mizgeftê de bû. Vêca ewî (s.) got: "Du rekat nimêj bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ إِسْتِحْبَابِ رَكْعَتَيْنِ بَعْدَ الْوُضُوءِ
## MUSTEHEBBÛNA KIRINA DU REKAT NIMÊJ PIŞTÎ DESTNIMÊJÊ

١١٤٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ لِبِلاَلٍ: (يَا بِلاَلُ حَدِّثْنِي بِأَرْجَى عَمَلٍ

عَمِلْتَهُ فِي الإِسْلَامِ، فَإِنِّي سَمِعْتُ دَفَّ نَعْلَيْكَ بَيْنَ يَدَيَّ فِي الجَنَّةِ) قَالَ: مَا عَمِلْتُ عَمَلاً أَرْجَى عِنْدِي مِنْ أَنِّي لَمْ أَتَطَهَّرْ طُهُوراً فِي سَاعَةٍ مِنْ لَيْلٍ أَوْ نَهَارٍ إِلَّا صَلَّيْتُ بِذَلِكَ الطُّهُورِ مَا كُتِبَ لِي أَنْ أُصَلِّيَ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1146-Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) ji Bilal re got: "Ya Bilal! Ka tu ji min re bêje kar û kiryarê te yê xêrtir ku te di Îslamê de kiriye. Lewra (di şeva mîracê de) min dengê pêlava te di cennetê de li pêşya xwe dibihîst." Bilal got: Ya Pêxemberê Xwedê! Çi şev û çi jî roj wextê min destnimêj bigirta miheqeq heta min bikariya bi wê destnimêjê nimêj dikir. Vêca kar û kiryarê minê ku ez pê hêvîdartir bim ev e. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ فَضْلِ يَوْمِ الْجُمُعَةِ

## FEZÎLETA CUM'Ê/ÎNÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿فَإِذَا قُضِيَتِ الصَّلَاةُ فَانْتَشِرُوا فِي الأَرْضِ وَابْتَغُوا مِنْ فَضْلِ اللَّهِ وَاذْكُرُوا اللَّهَ كَثِيراً لَعَلَّكُمْ تُفْلِحُونَ﴾

"Heger nimêj hate kirin (rabin û) di erdê de belav bibin û ji rizqê Xwedê (bi karê xwe) bixwazin. Gelekî Xwedê bînine bîra xwe û zikrê wî bikin, da ku hûn rizgar bibin."[1]

١١٤٧- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (خَيْرُ يَوْمٍ طَلَعَتْ عَلَيْهِ الشَّمْسُ يَوْمُ الْجُمُعَةِ، فِيهِ خُلِقَ آدَمُ، وَفِيهِ أُدْخِلَ الْجَنَّةَ، وَفِيهِ أُخْرِجَ مِنْهَا). رَوَاهُ مُسْلِم.

1147- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xêrtirînê rojên ku tav li ser hiltê, roja Înê ye: Di wê rojê de Hz. Adem (e.) hatiye afirandin û di wê rojê de ketiye cennetê de û ji cennetê jî di wê rojê de hatiye derxistin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٤٨- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ تَوَضَّأَ فَأَحْسَنَ الْوُضُوءَ ثُمَّ أَتَى الْجُمُعَةَ،

1 Cum'e, 62/10.

فَاسْتَمَعَ وَأَنْصَتَ، غُفِرَ لَهُ مَا بَيْنَهُ وَبَيْنَ الْجُمُعَةِ وَزِيَادَةَ ثَلَاثَةِ أَيَّامٍ، وَمَنْ مَسَّ الْحَصَى، فَقَدْ لَغَا). رَوَاهُ مُسْلِم.

1148- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Herkesê destnimêj bigre û baş destnimêj bigre –ferz û sunnetê wê xweşik pêk bîne– paşê jî (ji bo edakirina nimêja înê) were mizgeftê vêca guhê xwe bide (xutbê) û sukutê bike Xwedê te'ala gunehên wî yên neqeba her du înan de kiriye dixefirîne û sê rojan jî zêde. Kesê bi keviroka bileyîze (yan tiştek dîtir) xêra xwe wenda dike." *Muslim riwayet kiriye.*

١١٤٩ - وَعَنْهُ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (الصَّلَوَاتُ الْخَمْسُ وَالْجُمُعَةُ إِلَى الْجُمُعَةِ، وَرَمَضَانُ إِلَى رَمَضَانَ، مُكَفِّرَاتٌ مَا بَيْنَهُنَّ إِذَا اجْتُنِبَتِ الْكَبَائِرُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1149- Dîsa ji wî hatiye rîwayetkirin ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Her pênc nimêj, ji înê heta înê û ji Remezanê heta Remezanê dibin keffaretê wan gunehên ku di neqeba wan de hatine kirin, bi wî şertê ku gunehên mezin nehatibin kirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٥٠ - وَعَنْهُ وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ، ﷺ، أَنَّهُمَا سَمِعَا رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ عَلَى أَعْوَادِ مِنْبَرِهِ: (لَيَنْتَهِيَنَّ أَقْوَامٌ عَنْ وَدْعِهِمُ الْجُمُعَاتِ، أَوْ لَيَخْتِمَنَّ اللَّهُ عَلَى قُلُوبِهِمْ، ثُمَّ لَيَكُونُنَّ مِنَ الْغَافِلِينَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1150- Dîsa ji wî û ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku wan her dukan ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstine, ku ewî li ser mînbera xwe ya dar wiha digot: "Qewmek yan dê xwe ji terikandina nimêja înê biparêze, yan jî wê Xwedê te'ala dilê wan mohr bike û paşê jî dê ew kes bibe ji xafilan." *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٥١ - وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا جَاءَ أَحَدُكُمُ الْجُمُعَةَ، فَلْيَغْتَسِلْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1151- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê yek ji we hate nimêja înê bila serê xwe bişo." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٥٢- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (غُسْلُ يَوْمِ الْجُمُعَةِ وَاجِبٌ عَلَى كُلِّ مُحْتَلِمٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1152- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Serşûştina roja înê li ser her kesê balix bûye wacib e." *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٥٣- وَعَنْ سَمُرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ تَوَضَّأَ يَوْمَ الْجُمُعَةِ، فَبِهَا وَنِعْمَتْ، وَمَنِ اغْتَسَلَ فَالْغُسْلُ أَفْضَلُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1153- Ji Semûreyê (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê roja înê destnimêjê bigre, çi karekî qenc e, kesê serê xwe bişo, serşûştin qenctir e." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

١١٥٤- وَعَنْ سَلْمَانَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا يَغْتَسِلُ رَجُلٌ يَوْمَ الْجُمُعَةِ، وَيَتَطَهَّرُ مَا اسْتَطَاعَ مِنْ طُهْرٍ، وَيَدَّهِنُ مِنْ دُهْنِهِ، أَوْ يَمَسُّ مِنْ طِيبِ بَيْتِهِ، ثُمَّ يَخْرُجُ فَلَا يُفَرِّقُ بَيْنَ اثْنَيْنِ، ثُمَّ يُصَلِّي مَا كُتِبَ لَهُ، ثُمَّ يُنْصِتُ إِذَا تَكَلَّمَ الإِمَامُ، إِلَّا غُفِرَ لَهُ مَا بَيْنَهُ وَبَيْنَ الْجُمُعَةِ الأُخْرَى). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1154- Ji Selmanê (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Çi kesê roja înê serê xwe bişo, hingî bikaribe xwe paqij bike, bêhna xweş ya mala xwe li xwe bide, paşê bi rêkeve here mizgeftê, navbera du mirovan veneqetîne, paşê nimêja ku li ser ferz bûye bike û paşê jî heta îmam biaxive xwe kerr bike, miheqeq gunehê wî yê navbera wê îniyê û îniya pey wê tê, tê bexişandin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١١٥٥- وَعَنْ أَبِي هُرَيرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنِ اغْتَسَلَ يَوْمَ الْجُمُعَةِ غُسْلَ الْجَنَابَةِ، ثُمَّ رَاحَ فِي السَّاعَةِ الأُولَى، فَكَأَنَّمَا قَرَّبَ بَدَنَةً، وَمَنْ رَاحَ فِي السَّاعَةِ الثَّانِيَةِ، فَكَأَنَّمَا قَرَّبَ بَقَرَةً، وَمَنْ رَاحَ فِي السَّاعَةِ الثَّالِثَةِ، فَكَأَنَّمَا قَرَّبَ كَبْشاً أَقْرَنَ، وَمَنْ رَاحَ فِي السَّاعَةِ الرَّابِعَةِ، فَكَأَنَّمَا قَرَّبَ دَجَاجَةً، وَمَنْ رَاحَ فِي السَّاعَةِ الْخَامِسَةِ، فَكَأَنَّمَا قَرَّبَ بَيْضَةً، فَإِذَا خَرَجَ الإِمَامُ حَضَرَتِ الْمَلَائِكَةُ يَسْتَمِعُونَ الذِّكْرَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

  

1155- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê di roja înê de wekî serşûştina ji cenabetê serê xwe bişo, paşê jî ji bona kirina nimêja înê di sa'eta ewil de here her wekî devehek, di sa'eta duyem de here her wekî çêlekek, di sa'eta sêyem de here her wekî beranek, di sa'eta çarem de here her wekî mirîşkek û di sa'eta pêncem de here her wekî hêkek kiriye qurban. Vêca wextê îmam derkeve ji bo xwendina xutbê milyaket amade dibin û zikrê guhdarî dikin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٥٦ - وَعَنْهُ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ ذَكَرَ يَوْمَ الْجُمُعَةِ، فَقَالَ: (فِيهَا سَاعَةٌ لَا يُوَافِقُهَا عَبْدٌ مُسْلِمٌ، وَهُوَ قَائِمٌ يُصَلِّي يَسْأَلُ الله شَيْئاً، إِلَّا أَعْطَاهُ إِيَّاهُ) وَأَشَارَ بِيَدِهِ يُقَلِّلُهَا. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1156- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) behsa roja înê dikir, vêca got: "Di roja înê de sa'etek heye, eger bendeyê misilman, ku nimêj kiribe, rastî wê sa'etê bê û ji Xwedê tiştekî bixwaze wê Xwedê miheqeq ewê daxwaza wî bidiyê." Û Pêxemberê Xwedê (s.) bi destê xwe nîşan da ku ew sa'et wextekî pir hindik e. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٥٧ - وَعَنْ أَبِي بُرْدَةَ بْنِ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ عَبْدُ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ ﷺ: أَسَمِعْتَ أَبَاكَ يُحَدِّثُ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ فِي شَأْنِ سَاعَةِ الْجُمُعَةِ؟ قَالَ: قُلْتُ: نَعَمْ، سَمِعْتُهُ يَقُولُ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (هِي مَا بَيْنَ أَنْ يَجلِسَ الإِمَامُ إِلَى أَنْ تُقْضَى الصَّلَاةُ) رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1157- Ji Ebû Burdeyê kurê Ebû Mûsayê Eş'erî (r.), got: 'Ebdullahê Îbnu 'Umer (r.) gotiye: Ya Burde! Ma te ji bavê xwe bihîstiye ku di derbarê sa'eta roja înê (ku du tê de miheqeq qebûl dibin) de ji Pêxemberê Xwedê (s.) tiştek ragihandibe? Rawî dibêje: Min got: Belê, min ji bavê xwe bihîst, wiha digot: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Wextê ewê sa'etê neqeba rûniştina îmam ya li ser mînberê heta xilasiya nimêjê ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٥٨ - وَعَنْ أَوْسِ بْنِ أَوْسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ مِنْ أَفْضَلِ أَيَّامِكُمْ يَوْمَ الْجُمُعَةِ، فَأَكْثِرُوا عَلَيَّ مِنَ الصَّلَاةِ فِيهِ، فَإِنَّ صَلَاتَكُمْ مَعْرُوضَةٌ عَلَيَّ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1158- Ji Ewsê kurê Ews (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman xêrtirînê rojên we, roja înê ye. Vêca hûn di rojê de selewatan li ser min pir bînin. Lewra selewatên we, wê ji min re bêne pêşkeş kirin." *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

## بَابُ إِسْتِحْبَاب سجُود الشُّكْرِ

## MUSTEHEBBÛNA SECDA ŞUKRÊ

١١٥٩- عَنْ سَعْدِ بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ ﷺ قَالَ: خَرَجْنَا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ مِن مَكَّةَ نُرِيدُ الْمَدِينَةَ، فَلَمَّا كُنَّا قَرِيباً مِنْ عَزْوَرَاء نَزَلَ ثُمَّ رَفَعَ يَدَيْهِ، فَدَعَا الله سَاعَةً، ثُمَّ خَرَّ سَاجِداً، فَمَكَثَ طَوِيلاً، ثُمَّ قَامَ فَرَفَعَ يَدَيْهِ سَاعَةً، ثُمَّ خَرَّ ساجِداً -فَعَلَهُ ثَلاثاً- وَقَالَ: (إِنِّي سَأَلْتُ رَبِّي، وَشَفَعْتُ لِأُمَّتِي، فَأَعْطَانِي ثُلُثَ أُمَّتِي، فَخَرَرْتُ سَاجِداً لِرَبِّي شُكْراً، ثُمَّ رَفَعْتُ رَأْسِي، فَسَأَلْتُ رَبِّي لِأُمَّتِي، فَأَعْطَانِي ثُلُثَ أُمَّتِي، فَخَرَرْتُ سَاجِداً لِرَبِّي شُكْراً، ثُمَّ رَفَعْتُ رَأْسِي، فَسَأَلْتُ رَبِّي لِأُمَّتِي، فَأَعْطَانِي الثُّلُثَ الآخِرَ، فَخَرَرْتُ سَاجِداً لِرَبِّي). رَوَاهُ أَبُو دَاوود.

1159- Ji Se'dê kurê Ebû Weqqas (r.), got: Em digel Pêxemberê Xwedê (s.) bi qesd û mebesta Medîneyê ji Mekkeyê derketin. Wextê em hatin nêzîkî Azwerayê –navê cîhekî nêzîkî Mekkeyê ye– bûn Pêxemberê Xwedê (s.) ji hêstira xwe berjêr bû, paşê her du destên xwe bilind kir û demekê dua kir. Paşê çû secdê û demekî dirêj ma. Paşê rabû û dîsa her du destên xwe demekî bilind kir. Û paşê dîsa çû secdê. Ev kirinên xwe sê caran tekrar kir û got: "Min ji Rebbê xwe xwest û ji ummeta xwe re jî mehder daxwaz kir. Vêca Xwedê mehdera min ya di derbarê sêyeka ummeta min de qebûl kir û ez jî ji bo vê yekê çûme secda şukrê ji Rebbê xwe re. Paşê min serê xwe bilind kir û min dîsa ji bo ummeta xwe ji Rebbê xwe daxwaza mehderê kir. Vêca Xwedê mehdera min derbarê sêyeka ummeta min de dîsa qebûl kir û ez jî ji bo vê yekê dîsa çûme secda şukrê ji Rebbê xwe re. Paşê min serê xwe bilind kir û min dîsa ji bo ummeta xwe ji Rebbê xwe daxwaza mehderê kir. Vêca Xwedê mehdera min derbarê sêyeka ummeta min ya mayî de jî qebûl kir û ez jî ji bo vê yekê dîsa çûme secda şukrê ji Rebbê xwe re." *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ قِيَامِ اللَّيْلِ
## NIMÊJA ŞEVÊ (TEHECCUDÊ)

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَمِنَ اللَّيْلِ فَتَهَجَّدْ بِهِ نَافِلَةً لَكَ عَسَى أَنْ يَبْعَثَكَ رَبُّكَ مَقَاماً مَحْمُوداً﴾

"Wextekî ji şevê rabe nimêjan bi Qur'anê bike ku ferzeke zêde ye ji bo te bi tenê. Da Xwedayê te bi ewan nimêjan te bigihîne ciyê pesnedar (meqamê mehmûd)."[1]

﴿تَتَجَافَى جُنُوبُهُم عَنِ الْمَضَاجِعِ﴾

"Teniştên wan nakevne ser nivînan."[2]

﴿كَانُوا قَلِيلاً مِنَ اللَّيْلِ مَا يَهْجَعُونَ﴾

"Ew, hindikî ji şevê xewre diçûn."[3]

١١٦٠- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يَقُومُ مِنَ اللَّيْلِ حَتَّى تَتَفَطَّرَ قَدَمَاهُ. فَقُلْتُ لَهُ: لِمَ تَصْنَعُ هَذَا، يَا رَسُولَ اللَّهِ، وَقَدْ غُفِرَ لَكَ مَا تَقَدَّمَ مِنْ ذَنْبِكَ وَمَا تَأَخَّرَ؟ قَالَ: (أَفَلَا أَكُونُ عَبْداً شَكُوراً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1160- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxember (s.) bi şev radibû, heta her du piyên wî diwerimîn, îbadet dikir. Hz. 'Aîşe (r.) dibêje: Vêca min ji wî re got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ya Resûlê Xwedê! Tu bo çi wiha dikî? Heçku/welhal Xwedê te'ala gunehên te yên pêşîn û paşîn xefirandiye. Got: "Qey ez nebim 'ebdekî şikurdar? *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٦١- وَعَنْ عَلِيٍّ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ طَرَقَهُ وفَاطِمَةَ لَيْلاً، فَقَالَ: (أَلَا تُصَلِّيَانِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1161- Ji 'Elî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) bi şev li deriyê wî û Fatimeyê da û got: "Qey hûn nimêj nakin?" *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٦٢- وَعَنْ سَالِمِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ، ﷺ، عَنْ أَبِيهِ: أَنَّ رَسُولَ اللهِ ﷺ

1 Îsra, 17/79.
2 Secde, 32/16.
3 Zariyat, 51/17.

قَالَ: (نِعْمَ الرَّجُلُ عَبْدُ الله لَوْ كَانَ يُصَلِّي مِنَ اللَّيْلِ) قَالَ سَالِمٌ: فَكَانَ عَبْدُ الله بَعْدَ ذَلكَ لَا يَنَامُ مِنَ اللَّيْلِ إِلَّا قَلِيلاً. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1162- Ji Salimê kurê 'Ebdullahê Îbnu 'Umerê kurê Xettab (r.), ewî jî ji bavê xwe rîwayet kiriye ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Çi xweş mirov e 'Ebdullah, eger bi şev nimêj bikira wê rindtir bûya. Salim got: Êdî 'Ebdullah piştî vê gotinê bi şev pir kêm radiza (her wisa îbadet dikir). *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٦٣- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (يَا عَبْدَ الله لَا تَكُنْ مِثْلَ فُلَانٍ كَانَ يَقُومُ اللَّيْلَ فَتَرَكَ قِيَامَ اللَّيْلِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1163- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ya 'Ebdullah, tu nebe wekî filankesê ku berê radibû nimêja şevê, lê paşê terikand." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٦٤- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: ذُكِرَ عِنْدَ النَّبِيِّ ﷺ رَجُلٌ نَامَ لَيْلَةً حَتَّى أَصْبَحَ قَالَ: (ذَاكَ رَجُلٌ بَالَ الشَّيْطَانُ فِي أُذُنَيْهِ) أَوْ قَالَ: (فِي أُذُنِهِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1164- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Li cem Pêxember (s.) behsa mirovekî ku heta sibehê radizê hate kirin. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: Ew mirovekî Şeytan di her du guhên wî de, yan jî di guhekî wî de mîz kiriye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٦٥- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (يَعْقِد الشَّيْطَانُ عَلَى قَافِيَةِ رَأْسِ أَحَدِكُم، إِذَا هُوَ نَامَ، ثَلاثَ عُقَدٍ، يَضْرِبُ عَلَى كُلِّ عُقْدَةٍ: عَلَيْكَ لَيْلٌ طَوِيلٌ فَارْقُد، فَإِنِ اسْتَيْقَظَ، فَذَكَرَ الله انْحَلَّتْ عُقْدَةٌ، فَإِنْ تَوَضَّأَ، انْحَلَّتْ عُقْدَةٌ، فَإِنْ صَلَّى، انْحَلَّتْ عُقْدُهُ، فَأَصْبَحَ نَشِيطاً طَيِّبَ النَّفْسِ، وَإِلَّا أَصْبَحَ خَبِيثَ النَّفْسِ كَسْلَانَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1165- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Yek ji we wextê radize şeytan pişta serê wî sê girêkan girêdide û li ser her girêkê jî vê gotinê dibêje: Şev dirêj e, tu xweş raze. Vêca wextê ew mirov hişyar dibe û eger navê Xwedê zikir bike girêk vedibe, eger destnimêj bigre girêka din jî vedibe û eger nimêj bike girêka mayî jî vedibe û vêca

ew bi şahî û dilxweşî lê dibe sibeh. Yan ne (ango; eger hişyar nebe û wiha neke) bi tevizî û bi texelî lê dibe sibeh." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٦٦- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ سَلَام ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (أَيُّهَا النَّاسُ أَفْشُوا السَّلامَ، وَأَطْعِمُوا الطَّعَامَ، وَصَلُّوا بِاللَّيْلِ وَالنَّاسُ نِيَامٌ، تَدْخُلُوا الْجَنَّةَ بِسَلَام) رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1166- Ji 'Ebdullahê kurê Selam (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Gelî însanan! Hûn silavê di navbera xwe de belav kin, xwarinê bidin xwarin, wextê însan di xewê de ne hûn nimêj bikin. Wextê hûn vana bikin dê hûnê bi xweşî bikevine cennetê." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١١٦٧- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَفْضَلُ الصِّيَامِ بَعْدَ رَمَضَانَ شَهْرُ اللَّهِ الْمُحَرَّمُ، وَأَفْضَلُ الصَّلَاةِ بَعْدَ الْفَرِيضَةِ صَلَاةُ اللَّيْلِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1167- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Piştî meha Remezanê xêrtîrnê rojiya, rojiya meha Xwedê ku meha Muherremê ye. Û piştî nimêjên ferz jî xêrtirînê nimêjan, nimêja şevê ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٦٨- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (صَلَاةُ اللَّيْلِ مَثْنَى مَثْنَى، فَإِذَا خِفْتَ الصُّبْحَ فَأَوْتِرْ بِوَاحِدَةٍ) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1168Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Nimêja şevê du rekat du rekat e. Wextê tu bitirsî ji ketina wextê nimêja sibehê bi rekatekî witrê bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٦٩- وَعَنْهُ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يُصَلِّي مِنَ اللَّيْلِ مَثْنَى مَثْنَى، وَيُوتِرُ بِرَكْعَةٍ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1169- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxember (s.) bi şev nimêj du rekat du rekat dikir û bi rekatekê jî witir dikir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٧٠- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُفْطِرُ مِنَ الشَّهْرِ حَتَّى نَظُنَّ أَن لَا يَصُومَ مِنْهُ، وَيَصُومُ حَتَّى نَظُنَّ أَنْ لَا يُفْطِرَ مِنْهُ شَيْئاً، وَكَانَ لَا تَشَاءُ أَنْ تَرَاهُ مِنَ اللَّيْلِ مُصَلِّياً إِلَّا رَأَيْتَهُ، وَلَا نَائِماً إِلَّا رَأَيْتَهُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1170- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) piştî meha Remezanê rojî nedigirt me digot qey ewî (s.) ji wê mehê qet rojiyek negirtiye û wisa jî rojî digirt me zen dikir ku qet nefitiriye. Wextê te bixwesta ku tu ewî (s.) bi şev nimêjker bibînî miheqeq te yê ew wisa bidîta û wextê te bixwesta ku tu ewî (s.) razayî bibînî miheqeq te yê ew razayî bidîta. *Buxarî rîwayet kiriye.*

١١٧١ - وَعَنْ عَائِشَةَ، ﵂: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يُصَلِّي إِحْدَى عَشْرَةَ رَكعَةً، تَعْنِي فِي اللَّيْلِ يَسْجُدُ السَّجْدَةَ مِنْ ذلِكَ قَدْرَ مَا يَقْرَأُ أَحَدُكُمْ خَمْسِينَ آيَةً قَبْلَ أَنْ يَرْفَعَ رَأْسَهُ، وَيَرْكَعُ رَكْعَتَيْنِ قَبْلَ صَلَاةِ الْفَجْرِ، ثُمَّ يَضْطَجِعُ عَلَى شِقِّهِ الأَيْمَنِ حَتَّى يَأْتِيَهُ الْمُنَادِي لِلصَّلَاةِ. رَوَاهُ البُخَارِي.

1171- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) bi şev yanzdeh rekat nimêj dikir. Û yek secda wî ya di van nimêjan de bi qasî xwendina yekî ji we pêncî ayetên dirêj bû. Du rekat nimêj beriya şefeqê dikir û paşê jî xwe li ser kêleka xwe ya rastê dirêj dikir heta ku bangbêj ji bo qametê dihate bal. *Buxarî rîwayet kiriye.*

١١٧٢ - وَعَنْهَا قَالَتْ: مَا كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَزِيدُ فِي رَمَضَانَ وَلَا فِي غَيْرِهِ عَلَى إِحْدَى عَشْرَةَ رَكْعَةً، يُصَلِّي أَرْبَعاً فَلَا تَسْأَلْ عَنْ حُسْنِهِنَّ وَطُولِهِنَّ، ثُمَّ يُصَلِّي أَرْبَعاً فَلَا تَسْأَلْ عَنْ حُسْنِهِنَّ وَطُولِهِنَّ، ثُمَّ يُصَلِّي ثَلَاثاً، فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، أَتَنَامُ قَبْلَ أَنْ تُوتِرَ فَقَالَ: (يَا عَائِشَةَ إِنَّ عَيْنَيَّ تَنَامَانِ وَلَا يَنَامُ قَلْبِي). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1172- Dîsa ji wê (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ne di meha Remezanê de û ne jî di xeynê meha Remezanê de ji yanzdeh rekatan zêdetir nimêja şevê nedikir: Nimêj çar rekat çar rekat dikir û tu pirsa rindayî û dirêjaya wan neke! Paşê dîsa çar rekat çar rekat dikir û tu pirsa rindayî û dirêjaya wan jî neke! Paşê jî sê rekat dikir. Hz. 'Aîşe dibêje: Vêca min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu yê beriya nimêja witrê razê. Ewî (s.) got: "Ya 'Aîşe! Çavê min radizên, lê qelbê min ranazê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٧٣ - وَعَنْهَا أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يَنَامُ أَوَّلَ اللَّيْلِ، وَيقومُ آخِرَهُ فَيُصَلِّي. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1173- Dîsa ji wê (r.), hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) di ewilê şevê de radiza û di dawiya wê de jî radibû û nimêj dikir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٧٤ - وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: صَلَّيْتُ مَعَ النَّبِيِّ ﷺ لَيْلَةً، فَلَمْ يَزَلْ قَائِماً حَتَّى هَمَمْتُ بِأَمْرِ سُوءٍ. قِيلَ: مَا هَمَمْتَ؟ قَالَ: هَمَمْتُ أَنْ أَجْلِسَ وَأَدَعَهُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1174- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Min şevekê digel Pêxemberê Xwedê (s.) nimêj kir. Qiyama nimêjê hewqasî dirêj kir, êdî min qesda tiştekî xirab kir. Hate gotin: Te qesda çi kir? Ewî got: Min niyet kir ku ez rûnim û ewî (s.) tenê bihêlim. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٧٥ - وَعَنْ حُذَيْفَةَ ﷺ قَالَ: صَلَّيْتُ مَعَ النَّبِيِّ ﷺ ذَاتَ لَيْلَةٍ فَافْتَتَحَ الْبَقَرَةَ، فَقُلْتُ: يَرْكَعُ عِنْدَ الْمِائَةِ، ثُمَّ مَضَى، فَقُلْتُ: يُصَلِّي بِهَا فِي رَكْعَةٍ، فَمَضَى، فَقُلْتُ: يَرْكَعُ بِهَا، ثُمَّ افْتَتَحَ النِّسَاءَ فَقَرَأَهَا، ثُمَّ افْتَتَحَ آلَ عِمْرَانَ، فَقَرَأَها، يَقْرَأُ مُتَرَسِّلاً، إِذَا مَرَّ بِآيَةٍ فِيهَا تَسْبِيحٌ سَبَّحَ، وَإِذَا مَرَّ بِسُؤَالٍ سَأَلَ، وَإِذَا مَرَّ بِتَعَوُّذٍ تَعَوَّذَ، ثُمَّ رَكَعَ فَجَعَلَ يَقُولُ: (سُبْحَانَ رَبِّيَ الْعَظِيمِ) فَكَانَ رُكُوعُهُ نَحْواً مِنْ قِيَامِهِ، ثُمَّ قَالَ: (سَمِعَ اللَّهُ لِمَنْ حَمِدَه رَبَّنَا لَكَ الْحَمْدُ) ثُمَّ قَامَ طَوِيلاً قَرِيباً مِمَّا رَكَعَ، ثُمَّ سَجَدَ فَقَالَ: (سُبْحَانَ رَبِّيَ الأَعْلَى) فَكَانَ سُجُودُهُ قَرِيباً مِنْ قِيَامِهِ. رَوَاهُ مُسْلِم.

1175- Ji Huzeyfeyê kurê Yeman (r.), got: Min şevekê digel Pêxember (s.) nimêj kir û ewî (s.) dest bi xwendina sûretê Beqerê kir. Vêca min (di hundirê xwe de) got: Di ayeta sedî de wê here rukû'ê. Paşê ew (s.) ji ayeta sedî derbas bû. Vêca min got: Wê vî sûretî di vê rekatê de bixwîne. Dîsa ew (s.) derbas bû, vêca min got: Êdî wê bi vê here rukû'ê. Paşê dest bi sûretê Nîsa kir û ew xwend, paşê dest bi sûretê Alî 'Îmran kir û ew xwend. Û hêdî hêdî dixwend: Wextê ayeta ku tê de tesbîh heye derbas bibûya, tesbîh dida (digot: Subhanellah). Wextê ayeta ku tê de daxwaz heye derbas bibûya, daxwazî dikir. Wextê ayeta ku tê de te'wîz heye derbas bibûya, te'wîz dikir (digot: E'ûzû bîllahî min...). Paşê çû rukû'ê, vêca dest bi gotina; *subhane Rebbiye-l 'ezîmê* kir û rukû'a xwe jî wekî qiyama xwe dirêj kir. Paşê got: "Semî'el-lahû lî men hemîdeh Rebbena lekel-hemd" û paşê demeke dirêj

bi qasî sekneke nêzîkî rukû'ê li ser piyan ma. Paşê çû secdê û got: *Subhane Rebbiyel-e'la*. Secda wî jî hema hema bi qasî qiyama wî bû. *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٧٦- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: سُئِلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: أَيُّ الصَّلَاةِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: (طُولُ الْقُنُوتِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1176- Ji Cabir (r.), got: Ji Pêxemberê Xwedê (s.) hate pirskirin ku kîjan nimêj xêrtir e? Ewî (s.) got: “Nimêja ku qiyama wê dirêj be.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٧٧- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (أَحَبُّ الصَّلَاةِ إِلَى اللَّهِ صَلَاةُ دَاوُدَ وَأَحَبُّ الصِّيَامِ إِلَى اللَّهِ صِيَامُ دَاوُدَ، كَانَ يَنَامُ نِصْفَ اللَّيْلِ وَيَقُومُ ثُلُثَهُ، وَيَنَامُ سُدُسَهُ، وَيَصُومُ يَوماً، وَيُفْطِرُ يَوماً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1177- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Xêrtirînê nimêjan li bal Xweda, nimêja Dawûd e û xêrtirînê rojiyan li bal Xweda, rojiya Dawûd e. Hz. Dawûd nîvê şevê radibû, sêyeka şevê bi îbadet derbas dikir û şeşyeka wê jî radiza. Hz. Dawûd rojekê rojî digirt û rojekê jî difitirî.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٧٨- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ فِي اللَّيْلِ لَسَاعَةً، لَا يُوافِقُهَا رَجُلٌ مُسلِمٌ يَسْأَلُ الله خَيْراً مِنْ أَمْرِ الدُّنْيَا وَالآخِرَةِ، إِلَّا أَعْطَاهُ إِيَّاهُ، وَذلِكَ كُلَّ لَيْلَةٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1178- Ji Cabir (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Di şevê de sa'etek/demek heye, çi kesê misilman rastî wê sa'etê were û ji Xwedê tiştekî di derbarê dîn û dunya xwe de bixwaze wê Xwedê miheqeq ewê daxwaza wî bidiyê. Ew dem, di her şevê de heye.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٧٩- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (إِذَا قَامَ أَحَدُكُم مِنَ اللَّيْلِ فَلْيَفْتَتِح الصَّلَاةَ بِرَكْعَتَيْنِ خَفِيفَتَيْنِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1179- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye:

“Wextê yek ji we bi şev rabû bila bi du rekatên sivik dest bi nimêjê bike.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٨٠- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (إِذَا قامَ مِنَ اللَّيْلِ لِيُصَلِّيَ افْتَتَحَ صَلَاتَهُ بِرَكْعَتَيْنِ خَفِيفَتَيْنِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1180- Ji ‘Aîşe (r.), got: Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) bi şev ji bo nimêjê rabûya, bi du rekatên sivik dest bi nimêja xwe dikir. *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٨١- وَعَنْهَا ﵂ قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا فَاتَتْهُ الصَّلَاةُ مِنَ اللَّيْلِ مِنْ وَجَعٍ أَوْ غَيْرِهِ، صَلَّى مِنَ النَّهَارِ ثِنْتَي عَشَرَةَ رَكْعَةً. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1181- Ji ‘Aîşe (r.), got: Wextê Pêxemberê Xwedê (s.); çi bi sedem nexweşiyê û çi jî bi sedemekî din nimêja şevê lê derbas bibûya, bi rojê duwanzdeh rekat nimêj dikir. *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٨٢- وَعَنْ عُمَرَ بْنِ الخَطَّابِ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ نَامَ عَنْ حِزْبِهِ، أَوْ عَنْ شَيْءٍ مِنْهُ، فَقَرَأَهُ فِيمَا بَيْنَ صَلَاةِ الفَجْرِ وَصَلَاةِ الظُّهْرِ، كُتِبَ لَهُ كَأَنَّمَا قَرَأَهُ مِنَ اللَّيْلِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1182- Ji ‘Umerê kurê Xettab (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê razê ku zikr û wirdê xwe nekiribe û vêca ewî di navbera nimêja sibehê û nimêja nîvro de bixwîne herwekî bi şev xwendiye wisa jê re xêr tê nivîsandin.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٨٣- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (رَحِمَ الله رَجُلاً قَامَ مِنَ اللَّيْلِ، فَصَلَّى وَأَيْقَظَ إِمْرَأَتَهُ، فَإِنْ أَبَتْ نَضَحَ فِي وَجْهِهَا الْمَاءَ، رَحِمَ الله إِمْرَأَةً قَامَتْ مِنَ اللَّيْلِ فَصَلَّتْ، وَأَيْقَظَتْ زَوْجَهَا، وَإِنْ أَبَى نَضَحَتْ فِي وَجْهِهِ الْمَاءَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1183- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Xwedê rehmê li wî kesî bike ku bi şev radibe, nimêj dike, jina xwe hişyar dike û eger jina wî nexwest ku rabe avê li rûyê wê direşîne. Û Xwedê rehmê li wê jinikê jî bike ku bi şev radibe, nimêj dike, mêrê xwe hişyar dike û eger mêrê wê nexwest ku rabe avê li rûyê wî direşîne.” *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١١٨٤ - وَعَنْهُ وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ ﷺ قَالَا: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا أَيْقَظَ الرَّجُلُ أَهْلَهُ مِنَ اللَّيْلِ فَصَلَّيَا -أَوْ صَلَّى- رَكْعَتَيْنِ جَمِيعاً، كُتِبَا فِي الذَّاكِرِينَ وَالذَّاكِرَاتِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1184- Dîsa ji wî û ji Ebû Se'îdê (r.), gotin: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê mirovek jina xwe bi şev hişyar bike û ew her du bi hevdu re –yan jî ew mirov– du rekat nimêj bikin, wê bêne nivîsandin di nav 'wan kesên ku Xwedê bi bîr tînin; çi mêr û çi jî jin." *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١١٨٥ - وَعَنْ عَائِشَةَ، ﷺ، أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (إِذَا نَعَسَ أَحَدُكُمْ فِي الصَّلَاةِ، فَلْيَرْقُدْ حَتَّى يَذْهَبَ عَنْهُ النَّومُ، فَإِنَّ أَحَدَكُمْ إِذَا صَلَّى وَهُوَ نَاعِسٌ، لَعَلَّهُ يَذهَبُ يَسْتَغْفِرُ فَيَسُبَّ نَفْسَهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1185- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Wextê yek ji we di nimêjê de ponijî bila razê heta xewa wî jê çû. Lewra kesê bi ponijî nimêj bike, mumkin e ku di şûna îstixfarê dijûna ji xwe re bide." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٨٦ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا قَامَ أَحَدُكُمْ، مِنَ اللَّيْلِ فَاسْتَعْجَمَ القُرآنُ عَلَى لِسَانِهِ، فَلَم يَدْرِ مَا يَقُولُ، فَلْيَضْطَجِعْ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1186- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê yek ji we bi şev rabû û bi sedem bêxewiyê Qur'an li ser zimanê wî li hevdu aliya û nizanîbû ka çi dibêje bila xwe dirêj bike."

## بَابُ إِسْتِحْبَاب قِيَام التَّرَاوِيح
## NIMÊJA TEREWÎHÊ

١١٨٧ - عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ قَامَ رَمَضَانَ إِيمَاناً وَاحْتِسَاباً غُفِرَ لَهُ مَا تَقَدَّمَ مِنْ ذَنْبِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1187- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê bi xêra wê bawer be, pê hêvîdar be û rabe meha Remezanê îhya bike gunehê wî yê derbasbûyî tê bexişandin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٨٨ - وَعَنْهُ، ﷺ، قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُرَغِّبُ فِي قِيَامِ رَمَضَانَ مِنْ غَيْرِ أَنْ يَأْمُرَهُمْ فِيهِ بِعَزِيمَةٍ، فَيَقُولُ: (مَنْ قَامَ رَمَضَانَ إِيمَاناً وَاحْتِسَاباً غُفِرَ لَهُ مَا تَقَدَّمَ مِنْ ذَنْبِهِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1188- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) terxîb û teşwîqa misilmana li ser qiyama meha Remezanê dikir, lê ne bi emrê ferziyet. Û digot: "Kesê bi xêra wê bawer be, pê hêvîdar be û rabe meha Remezanê îhya bike gunehê wî yê derbasbûyî tê bexişandin." *Muslim riwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ قِيَامِ لَيْلَةِ الْقَدْرِ

## FEZÎLETA ŞEVA LEYLETUL-QEDRÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿إِنَّا أَنْزَلْنَاهُ فِي لَيْلَةِ الْقَدْرِ ۞ وَمَا أَدْرَاكَ مَا لَيْلَةُ الْقَدْرِ ۞ لَيْلَةُ الْقَدْرِ خَيْرٌ مِنْ أَلْفِ شَهْرٍ ۞ تَنَزَّلُ الْمَلَائِكَةُ وَالرُّوحُ فِيهَا بِإِذْنِ رَبِّهِمْ مِنْ كُلِّ أَمْرٍ ۞ سَلَامٌ هِيَ حَتَّى مَطْلَعِ الْفَجْرِ﴾

"Me Qur'an di şeveke bi rêz û rûmet de anî xwarê. Tu çi dizanî ew şeva bi rêz û rûmet çi şev e? Ew şev ji hezar mehan çêtire: Di wê şevê de milyaket û Cibrîl jî, bi hemû fermanê Xwedê re têne xwarê. Ev şev (şeva bi rêz û rûmet) şeva aşîtiyê ye heta ber sibê de."[1]

﴿إِنَّا أَنْزَلْنَاهُ فِي لَيْلَةٍ مُبَارَكَةٍ﴾

"Bi rastî me ev kitêb di şeveke pîroz de [ku (leyletul-qedr e) şeva bi rêz û rûmet e] anî xwarê."[2]

١١٨٩ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَنْ قَامَ لَيْلَةَ الْقَدْرِ إِيمَاناً وَاحْتِسَاباً، غُفِرَ لَهُ مَا تَقَدَّمَ مِنْ ذَنْبِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1189- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Kesê bi xêra wê bawer be, pê hêvîdar be û rabe şeva Leyletul Qedrê îhya bike gunehên wî yên derbasbûyî tên bexişandin." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

1 Qedr, 97/1-5.
2 Duxan, 44/3

١١٩٠- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ: أَنَّ رِجَالاً مِنْ أَصْحَابِ النَّبِيِّ ﷺ أُرُوا لَيْلَةَ القَدْرِ فِي الْمَنَامِ فِي السَّبْعِ الأَوَاخِرِ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَرَى رُؤْيَاكُمْ قَدْ تَوَاطَأَتْ فِي السَّبْعِ الأَوَاخِرِ، فَمَنْ كَانَ مُتَحَرِّيَهَا، فَلْيَتَحَرَّهَا فِي السَّبْعِ الأَوَاخِرِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1190- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku çend mirov ji eshabên Pêxember (s.) di xewna xwe de dîtin ku Leyletul Qedr di heft rojên dawiya meha Remezanê de ye. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ez xewna we dibînim ku rastî heft rojên dawiyê tê. Vêca kesê daxwaza Leyletul Qedrê bike bila di heftê dawî de lê bigere." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٩١- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ، قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُجَاوِرُ فِي الْعَشْرِ الأَوَاخِرِ مِنْ رَمَضَانَ، وَيَقُولُ: (تَحَرَّوْا لَيْلَةَ الْقَدْرِ فِي الْعَشْرِ الأَوَاخِرِ مِنْ رَمَضَانَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1191- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) di dehê dawiyê ji meha Remezanê de diket î'tikafê û digot: "Hûn Leyletul Qedrê di dehê dawiya ji meha Remezanê de bigerin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٩٢- وَعَنْهَا ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (تَحَرَّوْا لَيْلَةَ القَدْرِ فِي الْوَتْرِ مِنَ الْعَشْرِ الأَوَاخِرِ مِنْ رَمَضَانَ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1192- Dîsa ji wê (r.), hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn Leyletul Qedrê di şevên kit ji dehê dawiya meha Remezanê bigerin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١١٩٣- وَعَنْهَا ﷺ، قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا دَخَلَ الْعَشْرُ الأَوَاخِرُ مِنْ رَمَضَانَ، أَحْيَا اللَّيْلَ، وَأَيْقَظَ أَهْلَهُ، وَجَدَّ وَشَدَّ الْمِئْزَرَ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1193- Dîsa ji wê (r.), got: Wextê dikete dehikê dawiya meha Remezanê, Pêxemberê Xwedê (s.) şev bi îbadet diborand, ehlê mala xwe hişyar dikir û pêşmalk jî dişidand. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٩٤- وَعَنْهَا قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَجْتَهِدُ فِي رَمَضَانَ، مَا لَا يَجْتَهِدُ فِي غَيْرِهِ، وَفِي الْعَشْرِ الأَوَاخِرِ مِنْهُ مَا لَا يَجْتَهِدُ فِي غَيْرِهِ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1194- Dîsa ji wê (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) di meha Remezanê de xebateke wisa dikir ku di xeynê wê de xebateke wilo nedikir. Û di dehê dawiya wê de, xebateke wilo dikir ku di xeynê wan rojan de xebateke wilo nedikir. *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٩٥- وَعَنْهَا قَالَتْ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، أَرَأَيْتَ إِنْ عَلِمْتُ أَيُّ لَيْلَةٍ لَيْلَةُ الْقَدْرِ مَا أَقُولُ فِيهَا؟ قَالَ: (قُولِي: اللَّهُمَّ إِنَّكَ عَفُوٌّ تُحِبُّ العَفْوَ فَاعْفُ عَنِّي). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1195- Dîsa ji wê (r.), got: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ka tu ji bo min bêje, eger ez bizanibim ku kîjan şev şeva Leyletul Qedrê ye ez çi bêjim? Ewî (s.) got: "Tu bêje: Xwedayo! Bêguman tu bexşandeker î û ji bexşandinê jî hez dikî. Vêca tu min jî bibexşînî." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

## بَابُ فَضْلِ السِّوَاكِ

## FEZÎLETA MÎSWAKÊ

١١٩٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَوْلَا أَنْ أَشُقَّ عَلَى أُمَّتِي -أَوْ عَلَى النَّاسِ- لَأَمَرْتُهُمْ بِالسِّوَاكِ مَعَ كُلِّ صَلَاةٍ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1196-Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Heger li ser ummeta min –yan jî li ser însanan– ji zorhatina wê netirsiyama, minê digel her nimêjê emrê wan bikira." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٩٧- وَعَنْ حُذَيْفَةَ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا قَامَ مِنَ اللَّيْلِ يَشُوصُ فَاهُ بِالسِّوَاكِ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1197- Ji Huzeyfe (r.), got: Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) bi şev ji xewê rabûya devê xwe bi difirikand. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١١٩٨- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: كُنَّا نُعِدُّ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ سِوَاكَهُ وَطَهُورَهُ، فَيَبْعَثُهُ الله مَا شَاءَ أَنْ يَبْعَثَهُ مِنَ اللَّيْلِ فَيَتَسَوَّكُ، وَيَتَوَضَّأُ وَيُصَلِّي. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1198- Ji 'Aîşe (r.), got: Me ji bo Pêxemberê Xwedê (s.) mîswaka wî û ava destnimêja wî hazir dikir. Wextê Xwedê bixwesta ku ewî (s.) hişyar bike, hişyar dikir û ewî (s.) jî mîswaka xwe bikardianî, destnimêj digirt û nimêj dikir. *Muslim rîwayet kiriye.*

١١٩٩ - وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَكْثَرْتُ عَلَيْكُم فِي السِّوَاكِ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1199- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Derbarê mîswakê de min ji we re pir got." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٢٠٠ - وَعَنْ شُرَيْحِ بْنِ هَانِيءٍ قَالَ: قُلْتُ لِعَائِشَةَ، ﷺ: بِأَيِّ شَيْءٍ كَانَ يَبْدَأُ النَّبِيُّ ﷺ إِذَا دَخَلَ بَيْتَهُ؟ قَالَتْ: (بِالسِّوَاكِ) رَوَاهُ مُسْلِم.

1200- Ji Şureyhê kurê Hanî (r.), got: Min ji Hz. 'Aîşe (r.) re got: Wextê Pêxember (s.) dihate malê dest bi çi dikir? Ewê (r.) got: Bi mîswakê. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢٠١ - وَعَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: دَخلتُ عَلَى النَّبِيِّ ﷺ وَطَرَفُ السِّواكِ عَلَى لِسَانِهِ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1201- Ji Ebû Mûsayê Eşe'rî (r.), got: Ez çûm cem Pêxember (s.) û min dît ku serê mîswakê li ser zimanê wî bû. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٠٢ - وَعَنْ عَائِشَةَ، ﷺ، أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (السِّوَاكُ مَطْهَرَةٌ لِلْفَمِ مَرْضَاةٌ للرَّبِّ). رَوَاهُ النَّسَائِيُّ وَابْنُ خُزَيْمَةَ فِي صَحِيحِهِ بِأَسَانِيدَ صَحِيحَةٍ.

1202- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Mîswak, paqijkere ji bo dev, û sedem e ji bo rizaya Xwedê." *Nesaî û Îbn Xuzeyme jî di Sehîha xwe de bi senedeke sehîh rîwayet kirine.*

١٢٠٣ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (الْفِطْرَةُ خَمْسٌ) أَوْ (خَمْسٌ مِنَ الْفِطْرَةِ: الْخِتَانُ، وَالإِسْتِحْدَادُ، وَتَقْلِيمُ الأَظْفَارِ، وَنَتْفُ الإِبِطِ، وَقَصُّ الشَّارِبِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1203- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxember (s.) got: "Fitret û xû pênc tişt in, yan jî pênc xeslet ji fitretê ne: Sunetkirin, kurrkirina pirçên jêkirina

  

neynûkan, kurrkirina mûyên binçengan û yek jî kurtkirina simbêlan."
*Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٢٠٤- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (عَشْرٌ مِنَ الْفِطْرَةِ: قَصُّ الشَّارِبِ، وَإِعْفَاءُ اللِّحْيَةِ، وَالسِّوَاكُ، وَاسْتِنْشَاقُ الْمَاءِ، وَقَصُّ الأَظْفَارِ، وَغَسْلُ الْبَرَاجِمِ، وَنَتفُ الإِبْطِ، وَحَلْقُ الْعَانَةِ، وَانْتِقَاصُ الْمَاءِ). قَالَ الرَّاوِي: وَنَسِيتُ الْعَاشِرَةَ إِلَّا أَنْ يَكُونَ الْمَضْمَضَةَ، قَالَ وَكِيعٌ، وَهُوَ أَحَدُ رُوَاتِهِ: انْتِقَاصُ الْمَاءِ، يَعْنِي: الإِسْتِنْجَاءَ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1204- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Deh xeslet ji fitretê ne: Kurtkirina simbêlan, berdana rihê, mîswak, îstinşaq (ango kişandina avê di poz de da ku paqij bike), jêkirina neynûkan, şûştina movikên tiliyan, hildana mûyên binçengan, kurrkirina pirçên rû, destav." Rawî dibêje: Min xesleta dehan ji bîrkir; dibe ku xesleta dehan medmede (av li dev werdan) be. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢٠٥- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﵄ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (أَحْفُوا الشَّوَارِبَ وَأَعْفُوا اللِّحَى). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1205- Ji Îbnu 'Umer (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Hûn simbêlên xwe kurt bikin û riha xwe jî berdin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ تَأْكِيد وُجُوبِ الزَّكَاةِ
## TE'KÎDA WUCÛBA ZEKATÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَأَقِيمُوا الصَّلَاةَ وَآتُوا الزَّكَاةَ﴾

"Hûn nimêj bikin û zekatê bidin."[1]

﴿وَمَا أُمِرُوا إِلَّا لِيَعْبُدُوا اللَّهَ مُخْلِصِينَ لَهُ الدِّينَ حُنَفَاءَ وَيُقِيمُوا الصَّلَاةَ وَيُؤْتُوا الزَّكَاةَ وَذَلِكَ دِينُ القَيِّمَةِ﴾

1 Beqere, 2/43.

“Ji bilî perestina Xwedê, dilsozî û îxlasa di dîn de û dûriya ji rêyên şaş û berêxwedana rêya heq û kirina nimêjê û dayina zekatê ew bi tiştek dîtir nehatibûn emirkirin. Jixwe ev e dînê rast û dirust.”[1]

﴿خُذْ مِنْ أَمْوَالِهِمْ صَدَقَةً تُطَهِّرُهُمْ وَتُزَكِّيهِمْ بِهَا﴾

“Zekatê ji malê wan wergire, wan pê pak û paqij bike.”[2]

١٢٠٦- وَعَنِ ابْنِ عُمَر ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (بُنِيَ الإِسْلَامُ عَلَى خَمْس: شَهَادَةِ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا الله، وَأَنَّ مُحَمَّداً عَبْدُهُ ورَسُولُهُ، وَإِقَامِ الصَّلَاةِ، وَإِيتَاءِ الزَّكَاةِ، وَحَجِّ الْبَيْتِ، وَصَوْمِ رَمَضَانَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1206- Ji Îbnu ‘Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Îslam li ser pênc bingehan hatiye ava kirin: Şehdedayina ku ji xeynê Xwedê tu îlah tune û Hz. Muhemmed jî bende û qasidê wî ye, kirina nimêjê, dayina zekatê, çûyina hecê û girtina rojiya Remezanê.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٠٧- وَعَنْ طَلْحَةَ بْنِ عُبَيْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ مِنْ أَهْلِ نَجْدٍ، ثَائِرُ الرَّأْسِ، نَسْمَعُ دَوِيَّ صَوْتِهِ، وَلَا نَفْقَهُ مَا يَقُولُ، حَتَّى دَنَا مِنْ رَسُولِ الله ﷺ فإِذَا هُوَ يَسْأَلُ عَنِ الإِسْلَامِ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (خَمْسُ صَلَوَاتٍ فِي الْيَوْمِ وَاللَّيْلَةِ) قَالَ: هَلْ عَلَيَّ غَيْرُهُنَّ؟ قالَ: (لَا، إِلَّا أَنْ تَطَّوَّعَ) فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (وَصِيَامُ شَهْرِ رَمَضَانَ) قَالَ: هَلْ عَلَيَّ غَيْرُهُ؟ قَالَ: (لَا، إِلَّا أَنْ تَطَّوَّعَ) قَالَ: وَذَكَرَ لَهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ الزَّكَاةَ فَقَالَ: هَلْ عَلَيَّ غَيْرُهَا؟ قَالَ: (لَا إِلَّا أَنْ تَطَّوَّعَ) فَأَدْبَرَ الرَّجُلُ وَهُوَ يَقُولُ: وَالله لَا أَزِيدُ عَلَى هَذَا وَلَا أَنْقُصُ مِنْهُ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَفْلَحَ إِنْ صَدَقَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1207- Ji Telheyê kurê ‘Ubeydullah (r.), got: Mirovekî por gevjolî û xelkê Necdê hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û me gumîna dengê wî dibihîst, lê me nizanîbû ka çi dibêje. Heta ku hate nêzîkî Pêxemberê Xwedê (s.) êdî me zanî ku ew ji Îslamê pirsiyar dike. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Di şev û rojê de pênc nimêj hene.” Ewî mirovî got: Li ser min ji xeynê wan tu tiştekî din heye? Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Naxêr, lê tu nafileya bikî ew.”

1 Beyyîne, 98/5.
2 Tewbe, 9/103.

Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Rojî girtina meha Remezanê ye." Ewî mirovî got: Li ser min ji xeynê wê tu tiştekî din heye? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Naxêr, lê tu nafîleya bigirî ew." Rawî dibêje. Pêxemberê Xwedê (s.) behsa zekatê jî ji wî re kir. Ewî mirovî dîsa got: Li ser min ji xeynê wê tu tiştekî din heye? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Naxêr, lê tu nafîleya bikî ew." Li ser vê yekê ew mirov ziviri çû û wiha digot: Ez bi Xwedê sond dixwim ku ez tiştekî ne li van zêde dikim û ne jî jê kêm dikim. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ew, eger rastgo be, gihiştiye xilasiyê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٠٨- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ بَعَثَ مُعَاذاً ﷺ إِلَى الْيَمَنِ فَقَالَ: (ادْعُهُمْ إِلَى شَهَادَةِ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَأَنِّي رَسُولُ اللَّهِ، فَإِنْ هُمْ أَطَاعُوا لِذَلِكَ، فَأَعْلِمْهُمْ أَنَّ اللَّهَ تَعَالَى افْتَرَضَ عَلَيْهِمْ خَمْسَ صَلَوَاتٍ فِي كُلِّ يَوْمٍ وَلَيْلَةٍ، فَإِنْ هُمْ أَطَاعُوا لِذَلِكَ فَأَعْلِمْهُمْ أَنَ اللَّهَ افْتَرَضَ عَلَيْهِمْ صَدَقَةً تُؤْخَذُ مِنْ أَغْنِيَائِهِمْ، وَتُرَدُّ عَلَى فُقَرائِهِم). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1208- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) Mu'az (r.) şande Yemenê û got: "Tu wan dawet bike bal şehde anîna ku ji xeynê Xwedê tu îlah tune û ez jî qasidê wî me. Heger ewan îta'et bi vêya kirin, tu bi wan bide zanîn ku Xwedê te'ala di her roj û şevê de pênc wext nimêj li ser wan ferz kiriye. Heger ewan îta'et bi vêya jî kirin, tu bi wan bide zanîn ku Xwedê te'ala li ser wan sedeqe ferz kiriye ku ji dewlemendê wan bê standin û li feqîrên wan bê belavkirin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٠٩- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (أُمِرْتُ أَنْ أقاتِلَ النَّاسَ حَتَّى يَشهدُوا أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَأَنَّ مُحَمَّداً رَسُولُ اللَّهُ، وَيُقِيمُوا الصَّلَاةَ، وَيُؤْتُوا الزَّكَاةَ، فَإِذَا فَعَلوا ذَلِكَ، عَصَمُوا مِنِّي دِمَاءَهُمْ وأَمْوَالَهُمْ إِلَّا بِحَقِّ الإِسْلَامِ، وَحِسَابُهُمْ عَلَى اللَّهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1209- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Emrê min hatiye kirin ku ez bi însanan re şer bikim heta ku; şehde bidin ku ji xeynê Xwedê tu îlah tune û Hz. Muhemmed jî qasidê wî ye, nimêjê bikin û zekatê bidin. Wextê evan kirin xûn û malê xwe ji min distirînin. Bes heqê Îslamê ne tê de. Û hesabê wan jî li ser Xwedê ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢١٠ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: لَمَّا تُوُفِّيَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَكَانَ أَبُو بَكْرٍ ﷺ وَكَفَرَ مَنْ كَفَرَ مِنَ الْعَرَبِ، فَقَالَ عُمَرُ ﷺ: كَيْفَ تُقَاتِلُ النَّاسَ وَقَدْ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أُمِرتُ أَنْ أقاتِلَ النَّاسَ حَتَّى يَقُولُوا لَا إِلَهَ إِلَّا الله، فَمَنْ قَالَهَا، فَقَدْ عَصَمَ مِنِّي مَالَهُ وَنَفْسَهُ إِلَّا بِحَقِّهِ، وَحِسَابُهُ عَلَى اللهِ؟) فَقَالَ أَبُو بَكْرٍ: وَالله لأُقَاتِلَنَّ مَنْ فَرَّقَ بَيْنَ الصَّلَاةِ وَالزَّكَاةِ، فَإِنَّ الزَّكَاةَ حَقُّ الْمَالِ، والله لَوْ مَنَعُونِي عِقَالاً كَانُوا يُؤَدُّونَهُ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ لَقَاتَلْتُهُمْ عَلَى مَنْعِهِ، قَالَ عُمَرُ ﷺ: فَوَ اللَّهِ مَا هُوَ إِلَّا أَنْ رَأَيْتُ الله قَدْ شَرَحَ صَدْرَ أَبِي بَكْرٍ لِلْقِتَالِ، فَعَرَفْتُ أَنَّهُ الْحَقُّ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1210- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) wefat kir, Hz. Ebû Bekirê Siddîq bû xelîfe û qismekî gelek ji Ereban jî murted bûn (ji dînê Îslamê derketin) û men'a dayina zekatê kirin, Hz. Ebû Bekir (r.) li ser vê yekê bi wan re karê şer kir. Vêca Hz. 'Umer (r.) got: Tu wê çawa bi însanan re şer bikî, di halê ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Emrê min hatiye kirin ku ez bi însanan re şer bikim heta ku bêjin ku ji xeynê Xwedê tu îlah tune. Û kesê vêya bêje, mal û canê xwe ji min distirîne. Bes heqê Îslamê ne tê de. Û hesabê wî jî li ser Xwedê ye?" Vêca Hz. Ebû Bekir got: Ez bi Xwedê sond dixwim ku ezê bi wî kesê ku ferq Ûcudahiyê di navbera nimêj û zekatê de çêbike re şer bikim. Lewra zekat heqê mal e. Naxwe eger ew kap û werîsê ku didane Pêxemberê Xwedê (s.) jî nedin, miheqeq bi sedem wê men'ê be jî ezê bi wan re şer bikim. Hz. 'Umer (r.) jî got: Ez bi Xwedê sond dixwim, min dît ku Xwedê dilê Ebû Bekir ji bo şerê ronahî kiriye û min zanî ku ew heq e. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢١١ - وَعَنْ أَبِي أَيُّوبَ ﷺ أَنَّ رَجُلاً قَالَ لِلنَّبِيِّ ﷺ أَخْبِرْنِي بِعَمَلٍ يُدْخِلُنِي الْجَنَّةَ، قَالَ: (تَعْبُدُ الله لَا تُشْرِكُ بِهِ شَيْئاً، وَتُقِيمُ الصَّلَاةَ، وَتُؤْتِي الزَّكَاةَ، وَتَصِلُ الرَّحِمَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1211- Ji Ebû Eyyûb[1] (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî ji Pêxember (s.) re got: Tu min bi ewî kar û kiryarên ku min bibe cennetê agahdar bike. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Tu îbadetê Xwedê bike, ji wî re hevbeşa çêneke, nimêj bike, zekatê bide û sileya rehmê bike (eqrebayên xwe raçav bike)." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 Xalidê kurê Zeyd.

١٢١٢- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ: أَنَّ أَعرَابِيّاً أَتَى النَّبِيَّ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ دُلَّنِي عَلَى عَمَلٍ إِذَا عَمِلْتُهُ، دَخَلْتُ الْجَنَّةَ؟ قَالَ: (تَعْبُدُ الله وَلَاتُشْرِكُ بِهِ شَيْئاً، وَتُقِيمُ الصَّلَاةَ، وَتُؤْتِي الزَّكَاةَ المَفْرُوضَةَ، وَتَصُومُ رَمَضَانَ) قَالَ: وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ، لَا أَزِيدُ عَلَى هَذَا، فَلَمَّا وَلَّى، قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (مَنْ سَرَّهُ أَنْ يَنْظُرَ إِلَى رَجُلٍ مِنْ أَهْلِ الْجَنَّةِ فَلْيَنْظُر إِلَى هَذَا).
رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1212- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî bedewî hate bal Pêxember (s.) û got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu min bi kar û kiryarekî agahdar bike, wextê ez ewî bikim ezê biçime cennetê. Ewî (s.) got: "Tu îbadetê Xwedê bike, ji wî re tu hevbeşî çêneke, nimêj bike, zekata ferz bide û rojiya meha Remezanê bigre." Îcar ewî mirovê bedewî got: Ez bi wî Xwedayê ku nefsa min bi destê wî ye sond dixwim ku ez tiştekî li ser vêya zêde nakim. Vêca wextê ew zivirî çû, Pêxember (s.) got: "Kesê kêfxweş bibe ku li mirovekî ehlê cennetê binêhêre bila li vî mirovî binihêre." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢١٣- وَعَنْ جَرِيرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: بَايَعْتُ النَّبِيَّ ﷺ عَلَى إِقَامِ الصَّلَاةِ، وَإِيتَاءِ الزَّكَاةِ، وَالنُّصْحِ لِكُلِّ مُسْلِمٍ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1213- Ji Cerîrê kurê 'Ebdullah (r.), got: Min li ser kirina nimêjê, dayina zekatê û şîretkirina li misilmanan bey'et bi Pêxember (s.) re kir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢١٤- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا مِنْ صَاحِبِ ذَهَبٍ، وَلَا فِضَّةٍ، لَا يُؤَدِّي مِنْهَا حَقَّهَا إِلَّا إِذَا كَانَ يَوْمُ الْقِيَامَةِ صُفِّحَتْ لَهُ صَفَائِحُ مِنْ نَارٍ، فَأُحْمِيَ عَلَيْهَا فِي نَارِ جَهَنَّمَ، فَيُكْوَى بِهَا جَنْبُهُ، وَجَبِينُهُ، وَظَهْرُهُ، كُلَّمَا بَرَدَتْ أُعِيدَتْ لَهُ فِي يَوْمٍ كَانَ مِقْدَارُهُ خَمْسِينَ أَلْفَ سَنَةٍ، حَتَّى يُقْضَى بَيْنَ الْعِبَادِ، فَيُرَى سَبِيلُهُ، إِمَّا إِلَى الْجَنَّةِ، وَإِمَّا إِلَى النَّارِ) قِيلَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، فَالإِبِلُ؟ قَالَ: (وَلَا صَاحِبِ إِبِلٍ لَا يُؤَدِّي مِنْهَا حَقَّهَا، وَمِنْ حَقِّهَا حَلْبُهَا يَوْمَ وِرْدِها، إِلَّا إِذَا كَانَ يَوْمُ الْقِيَامَةِ بُطِح لَهَا بِقَاعٍ قَرْقَرٍ أَوْفَرَ مَا كَانَتْ، لَا يَفْقِدُ مِنْهَا

فَصِيلاً وَاحِداً، تَطَؤُهُ بِأَخْفَافِهَا، وَتَعَضُّهُ بِأَفْوَاهِهَا، كُلَّمَا مَرَّ عَلَيْهِ أُولاهَا، رُدَّ عَلَيْهِ أُخْرَاهَا، فِي يَوْمٍ كَانَ مِقْدَارُهُ خَمْسِينَ أَلْفَ سَنَةٍ، حَتَّى يُقْضَى بَيْنَ الْعِبادِ، فَيُرَى سَبِيلُه، إِمَّا إِلَى الْجَنَّةِ وَإِمَّا إِلَى النَّارِ).

قِيلَ: يَا رَسُولَ الله فَالْبَقَرُ وَالْغَنَمُ؟ قَالَ: (وَلَا صَاحِبُ بَقَرٍ وَلَا غَنَمٍ لَا يُؤَدِّي مِنْهَا حَقَّهَا، إِلَّا إِذَا كَانَ يَوْمُ الْقِيَامَةِ، بُطِحَ لَهَا بِقَاعٍ قَرْقَرٍ، لَا يَفْقِدُ مِنْهَا شَيْئاً، لَيْسَ فِيهَا عَقْصَاءُ، وَلَا جَلْحَاءُ، وَلَا عَضْبَاءُ، تَنْطَحُهُ بِقُرُونِهَا، وَتَطَؤُهُ بِأَظْلَافِهَا، كُلَّمَا مَرَّ عَلَيْهِ أُولَاهَا، رُدَّ عَلَيْهِ أُخْرَاهَا، فِي يومٍ كَانَ مِقْدَارُهُ خَمْسِين أَلْفَ سَنَةٍ حَتَّى يقْضَى بَيْنَ الْعِبَادِ، فَيُرَى سَبيلُهُ إِمَّا إِلَى الْجَنَّةِ، وَإِمّا إِلَى النَّارِ).

قِيلَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ فَالْخَيْلُ؟ قَالَ: (الْخَيْلُ ثَلَاثَةٌ: هِيَ لِرَجُلٍ وِزرٌ، وَهِيَ لِرجُلٍ سِتْرٌ، وَهيَ لِرجُلٍ أَجْرٌ. فَأَمَّا الَّتِي هِيَ لَهُ وِزْرٌ فَرَجُلٌ رَبَطَهَا رِيَاءً وَفَخْراً وَنِوَاءً عَلَى أَهْلِ الإِسْلَامِ، فهِيَ لَهُ وِزْرٌ، وَأَمَّا الَّتِي هِيَ لَهُ سِتْرٌ، فَرَجُلٌ رَبَطَهَا فِي سَبِيلِ اللَّهِ، ثُمَّ لَمْ يَنْسَ حَقَّ الله فِي ظُهُورِهَا، وَلَا رِقَابِهَا، فَهِيَ لَهُ سِتْرٌ، وَأَمَّا الَّتِي هِيَ لَهُ أَجْرٌ، فَرَجُلٌ رَبَطَهَا فِي سَبِيلِ اللَّهِ لِأَهْلِ الإِسْلَامِ فِي مَرْجٍ، أَوْ رَوْضَةٍ، فَمَا أَكَلَتْ مِنْ تِلْكَ الْمَرْجِ أَوِ الرَّوْضَةِ مِن شَيءٍ إِلَّا كُتِبَ لَهُ عَدَدَ مَا أَكَلَتْ حَسَناتٌ، وَكُتِبَ لَهُ عَدَدَ أَرْوَاثِهَا وَأَبْوَالِهَا حَسَنَاتٌ، وَلَا تَقْطَعُ طِوَلَهَا فَاستَنَّت شَرَفاً أَو شَرَفَيْنِ إِلَّا كَتَبَ الله لَهُ عَدَدَ آثَارِهَا، وَأَرْوَاثِهَا حَسَنَاتٍ، وَلَا مَرَّ بِهَا صَاحِبُهَا عَلَى نَهْرٍ، فَشَرِبَتْ مِنْهُ، وَلَا يُرِيدُ أَنْ يَسْقِيَهَا إِلَّا كَتَبَ الله لَهُ عَدَدَ مَا شَرِبَت حَسَنَاتٍ).

قِيلَ: يَا رَسُولَ الله فَالْحُمُرُ؟ قَالَ: (مَا أُنْزِلَ عليَّ في الْحُمُرِ شَيْءٌ إِلَّا هَذِهِ الآيَةُ الْفَاذَّةُ الجَامِعَةُ: (فَمَنْ يَعْمَلْ مِثْقَالَ ذَرَّةٍ خَيْراً يَرَهُ ۝ وَمَنْ يَعْمَلْ مِثْقَالَ ذَرَّةٍ شَرّاً يَرَهُ).

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ، وَهَذَا لَفظُ مُسْلِم.

1214- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwediyê

  

zêr û zîvê ku heqê wan (zikata wan) nedabe, dê roja qiyametê ew zêr û zîv bibin zincîrê agir, wê di agirê cehennemê de bêne qijilandin û pê kêlek, enî û pişta wî kesî wê bê dax kirin. Ew zincîr çiqas sar bibe wê dîsa bê zivirandin bal awayê xwe yê berê ve di wê roja ku muddetê wê pêncî hezar salê dunyayê ye. Ev rewş berdewam dike heta ku di navbera însanan de daraz bê danîn, vêca êdî ew kes rêya xwe dibîne; yan diçe cennetê yan jî cehennemê." Hate gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Lê deveh? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Xwediyê devehê yê ku heqê wê nedabe, ku ji heqê dotina şîrê wê di roja anîna wê de, miheqeq roja qiyametê ji ber ku heqê deveha pêk neaniye wê di deşteke rast de bê dirêj kirin û deveh jî bê kêmasî û bi halê xwe yê qelewtir bi simê xwe wê pêl wî bikin û bi devê xwe jî wê ewî gez bikin. Her ya pêşîn wextê derbas bibe ya dawîn dîsa wê bizvire, di wê roja ku muddetê wê pêncî hezar salên dunyayê ye. Ev rewş berdewam dike heta ku di navbera însanan de daraz bê danîn, vêca êdî ew kes rêya xwe dibîne; yan diçe cennetê yan jî cehennemê." Hate gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Lê dewar û pez? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Xwediyê dewar û pez yê ku heqê wan nedabe, miheqeq roja qiyametê ji ber ku heqê wan pêk neaniye wê di deşteke rast de bê dirêj kirin û ew dewar û pez bê kêmasî, bi şax û ne şax şikestî û ne jî şax xwar, bi halê xwe yê qelewtir bi şaxê xwe wê li ewî bidin û bi simê xwe jî wê pêl wî bikin. Her ya pêşîn wextê derbas bibe ya dawîn dîsa wê bizvire, di wê roja ku muddetê wê pêncî salê dunyayê ye. Ev rewş berdewam dike heta di navbera însanan de daraz bê danîn, vêca êdî ew kes rêya xwe dibîne; yan diçe cennetê yan jî cehennemê." Hate gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Lê hesp? Pêxemberê Xwedê (s.) got: Hesp sê qism in: Qismek ji bo mirov guneh e, qismek stare ye û qismek jî xêr e. Ew hespê ku guneh e eva ye; ew mirovê ku ewî hespî ji bo durûtî, qurretî û dijminiya ehlê Îslamê girêdaye. Ev hespa guneh e. Hespê ku stare ye jî eva ye; ew mirovê ku ewî hespî di rêya Xwedê de girêdide, lê heqê Xwedê yê li ser pişta wî û di stûyê wî de ji bîr nake. Ev hespa stare ye. Heçîka hespê ku xêr e jî eva ye; ew mirovê ku ewî hespî ji bo ehlê Îslamê di mêrg û bax de girêdaye. Vêca ew hesp, ji ewî mêrg û baxî çi bixwe miheqeq bi hejmara ewî xwarina wî xêr ji xwediyê wê re tê nivîsandin. Û dîsa bi hejmara rêx û mîza wî hespî xêr ji xwediyê wê re tê nivîsandin. Ew hesp bi qasî dirêjaya werîsê ku pê hatiye tewldan bibeze girekî û yan du giran miheqeq Xwedê bi hejmara dews û rêxa wî ji xwediyê wê re xêrê dinivîse. Xwediyê wî hespê ewê di ser çemekî re derbas bike, ew jî ji wî çemî bixwe di halê ku xwediyê wê jî hez nedikir ku hespê wî avê bixwe miheqeq dîsa Xwedê bi hejmara

vexwarina wê, ji xwediyê wê re xêrê binivîse. Hate gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Lê ker? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Derbarê keran de ji xeynê vê ayeta hanê bi tenê û bi naverok tu tiştek ji min re nazil nebûye: Kê bi qasî zerrekê jî qencî kiribe wê xelata wê qenciyê bibîne û kê jî bi qasî zerrekê jî xerabî kiribe wê cezayê wê xerabiyê bibîne." *Buxarî û Muslim riwayet kirine. Lê lefzê Muslim e.*

## بَابُ وُجُوبِ صَوْمِ رَمَضَان
## ROJIYA REMEZANÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا كُتِبَ عَلَيْكُمُ الصِّيَامُ كَمَا كُتِبَ عَلَى الَّذِينَ مِنْ قَبْلِكُمْ لَعَلَّكُمْ تَتَّقُونَ ۝ أَيَّاماً مَعْدُودَاتٍ فَمَنْ كَانَ مِنْكُم مَرِيضاً أَوْ عَلَى سَفَرٍ فَعِدَّة مِنْ أَيَّامٍ أُخَرَ وَعَلَى الَّذِين يُطِيقُونَهُ طَعَامُ مِسْكِينٍ فَمَن تَطَوَّعَ خَيْراً فَهُوَ خَيْر لَهُ وَأَنْ تَصُومُوا خَيْر لكُمْ إِنْ كُنْتُمْ تَعْلَمُونَ ۝ شَهْرُ رَمَضَانَ الَّذِى أُنْزِلَ فِيهِ الْقُرْآنُ هُدىً لِلنَّاسِ وَبَيِّنَاتٍ مِنَ الْهُدَى وَالْفُرْقَانِ فَمَنْ شَهِدَ مِنْكُمْ الشَّهْرَ فَلْيَصُمْهُ وَمَنْ كَانَ مَرِيضاً أَوْ عَلَى سَفَرٍ فَعِدَّةٌ مِنْ أَيَّامٍ أُخَرَ﴾

"Gelî ewên bawerî anîne! Rojî li ser we hatiye nivîsandin, herwekî li ser yên beriya we jî hatiye nivîsîn. Belkî hûn xwe ji gunehan biparêzin. Çend rojên (diyarkirî ne). Vêca heçîka ji we yê nexweş be, yan li ser rêyekê be bila temamê rojiyên ku xwariye bigre. Û kesê gelek zehmet û nexweşiyê bi girtina wan dibîne bila pêş xwarina her rojiyekê ve xwarina belengazekî biqrin serxwe û bidin. Îcar kesê bêtir jî bigre ser xwe û bide ji bo wî gelek xêrtir e. Rojîgirtin ji bo we gelek çêtir e eger hûn bizanibin. (Ev çend roj) meha Remezanê ye. Ew meha Qur'an tê de hatiye xwarê, (Qur'an) rasterêyî ye ji bo xelkê û nîşanê rasterêyê û vawêrê ye. Vêca herkesê ji we ev meh bi ser de hat (li mala xwe be û ne li ser oxirê be) bila rojiyan bigre. Heçî yê nexweş be yan li ser oxirekê be (ji bo wî heye bixwe û) bila temamê hejmara rojiyên xwarî di wextekî din de bigre."[1]

1 Beqere, 2/183-185

  

١٢١٥- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (قَالَ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ: كُلُّ عَمَلِ ابْنِ آدَمَ لَهُ إِلَّا الصِّيَامَ، فَإِنَّهُ لِي وَأَنَا أَجْزِي بِهِ، وَالصِّيَامُ جُنَّةٌ، فَإِذَا كَانَ يَوْمُ صَوْمِ أَحَدِكُمْ فَلَا يَرْفُثْ وَلَا يصْخَبْ، فَإِنْ سَابَّهُ أَحَدٌ أَوْ قَاتَلَهُ، فَلْيَقُلْ: إِنِّي صَائِمٌ وَالَّذِي نَفْسُ مُحَمَّدٍ بِيَدِهِ لَخُلُوفُ فَمِ الصَّائِمِ أَطْيَبُ عِنْدَ اللهِ مِنْ رِيحِ الْمِسْكِ، لِلصَّائِمِ فَرْحَتَانِ يَفْرَحُهُمَا: إِذَا أَفْطَرَ فَرِحَ بِفِطْرِهِ، وَإِذَا لَقِيَ رَبَّهُ فَرِحَ بِصَوْمِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم وَهَذَا لَفْظُ الْبُخَارِي.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: (يَتْرُكُ طَعَامَهُ، وَشَرَابَهُ، وَشَهْوَتَهُ، مِنْ أَجْلِي، الصِّيَامُ لِي وَأَنَا أَجْزِي بِهِ، وَالْحَسَنَةُ بِعَشْرِ أَمْثَالِهَا).

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: (كُلُّ عَمَلِ ابْنِ آدَمَ يُضَاعَفُ: الْحَسَنَةُ بِعَشْرِ أَمْثَالِهَا إِلَى سَبْعِمِائَةِ ضِعْف، قَالَ اللَّهُ تَعَالَى: إِلَّا الصَّوْمَ فَإِنَّهُ لِي وَأَنا أَجْزِي بِهِ، يَدَعُ شَهْوَتَهُ وَطَعَامَهُ مِنْ أَجْلِي، لِلصَّائِمِ فَرْحَتَانِ: فَرْحَةٌ عِنْدَ فِطْرِهِ، وَفَرْحَةٌ عِنْدَ لِقَاءِ رَبِّهِ، وَلَخُلُوفُ فِيهِ أَطْيَبُ عِنْدَ اللَّهِ مِنْ رِيحِ المِسْكِ).

1215- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedê 'ezze we celle gotiye: "Hemû kar û kiryarên însanan ji wan re ne, ji xeynê rojiyê. Lewra rojî ji min re ye û ezê xelata wê bidim. Rojî sîper e (rojî xwediyê xwe ji xerabî û ji gunehan diparêze). Vêca wextê yek ji we rojî girt, bila axaftinên pişêw neke û bila nexeyîde. Vêca eger yekî jê re dijûn kir yan pê re şer kir bila bêje: Ez bi rojî me. Ez bi wî Xwedayê ku nefsa Muhemmed bi destê wî ye sond dixwim, bêhna devê mirovê bi rojî, li cem Xwedê ji bêhna miskê xweştir e. Ji bo mirovê bi rojî du dilşahiyê ku ewî şa dikin hene: Wextê difitire, bi fitara xwe şa dibe û wextê rastî Rebbê xwe tê bi sedem rojîgirtina xwe şa dibe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine. Lê lefzê Buxarî ye.*

Di senedeke Buxarî de: "(Mirovê bi rojî) xwarin, vexwarin û şehweta xwe ji bo min diterikîne. Rojî ji min re ye û ezê xelata wê bidim. Û her xêrek jî bi deh carî xwe ye."

Di senedeke Muslim de: Hemû kar û kiryarên însanan xêra wan bi qat qat tê dayin: Her xêrek bi deh carî xwe zêde dibe heta hefsed carî. Lê Xwedayê te'ala gotiye: "Ji xeynê rojiyê. Lewra rojî ji min re ye û ezê xelata wê bidim: Mirovê bi rojî şehwet û xwarina xwe ji bo min diterikîne. Ji

mirovê bi rojî re du dilşahî hene: Dilşahiya li nik fitarê û yek jî dilşahiya wextê rastî Rebbê xwe tê. Ez sond dixwim, bêhna devê mirovê bi rojî, li cem Xwedê ji bêhna miskê xweştir e."

١٢١٦- وَعَنْهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ أَنْفَقَ زَوْجَيْنِ فِي سَبِيلِ الله نُودِيَ مِنْ أَبْوَابِ الْجَنَّةِ: يَا عَبْدَ الله، هَذَا خَيْرٌ، فَمَنْ كَانَ مِنْ أَهْلِ الصَّلَاةِ دُعِيَ مِنْ بَابِ الصَّلَاةِ، وَمَنْ كَانَ مِنْ أَهْلِ الْجِهَادِ دُعِيَ مِنْ بَابِ الْجِهَادِ، وَمَنْ كَانَ مِنْ أَهْلِ الصِّيَامِ دُعِيَ مِنْ بَابِ الرَّيَّانِ، وَمَنْ كَانَ مِنْ أَهْلِ الصَّدَقَة دُعِيَ مِنْ بَابِ الصَّدَقَةِ) قَالَ أَبُو بَكْرٍ ﷺ: بِأَبِي أَنْتَ وَأُمِّي يَا رَسُولَ اللَّهِ مَا عَلَى مَنْ دُعِيَ مِنْ تِلْكَ الأَبْوَابِ مِنْ ضَرُورَةٍ، فَهَلْ يدْعَى أَحَدٌ مِنْ تِلْكَ الأَبْوَابِ كُلِّهَا؟ قَالَ: (نَعَمْ، وَأَرْجُو أَنْ تَكُونَ مِنْهُمْ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1216- Dîsa ji wî (r.), hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kê di rêya Xwedê de du tişt mezixandibin wê ji deriyê cennetê bê gazîkirin. Bendê Xwedê! Eva xêr e. Vêca kî ji ehlê nimêjê be ji deriyê nimêjê tê gazîkirin, kî ji ehlê cîhadê be ji deriyê cîhadê tê dawet kirin, kî ji ehlê rojiyê be ji deriyê Reyyanê tê dawet kirin û kî jî ji ehlê sedeqê be ji deriyê sedeqê tê dawet kirin. Îcar Hz. Ebû Bekir (r.) got: Dê û bavê min gorî te bin ya Pêxemberê Xwedê! Gelo li ser mirovê ku ji evan deriyan bê gazî kirin tu bêgavîtî/mecbûriyet heye û gelo tu kes heye ku ji van deriyan hemûkî bê gazî kirin? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Belê, ez hêvîdar im ku tu ji wan bî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢١٧- وَعَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْد ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ فِي الْجَنَّةِ بَاباً يُقَالُ لهُ الرَّيَّانُ يَدْخُلُ مِنْهُ الصَّائِمُونَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، لَا يَدْخُلُ مِنْهُ أَحَدٌ غَيْرُهُمْ، يُقَالُ: أَيْنَ الصَّائِمُونَ؟ فَيَقُومُونَ لَا يَدْخُلُ مِنْهُ أَحَدٌ غَيْرُهُمْ، فَإِذَا دَخَلُوا أُغْلِقَ، فَلَمْ يَدْخُلْ مِنْهُ أَحَدٌ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1217- Ji Sehlê kurê Se'd (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Bêguman di cennetê de deriyek heye, jê re tê gotin: Reyyan. Roja qiyametê mirovê bi rojî di wî deriyî de dikeve cennetê û ji xeynê wan jî tu kes di wî deriyî re nakeve cennetê. Tê gotin: Mirovê bi rojî li kuderê ne? Ew jî radibin, ji xeynê wan tu kes di wî deriyi de daxil nabe. Vêca wextê ew dikevine cennetê ew derî

tê girtin û êdî tu kes di wî deriyi re nakevinê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢١٨- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا مِنْ عَبْدٍ يَصُومُ يَوْماً فِي سَبِيلِ اللَّهِ إِلَّا بَاعَدَ الله بِذَلِكَ الْيَوْمِ وَجْهَهُ عَنِ النَّارِ سَبْعِينَ خَرِيفاً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1218- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "'Ebdê ku di rêya Xwedê de rojekê rojî bigre miheqeq Xwedê wê rûyê wî kesî bi sedem wê rojê heftê payîzî (sal) ji êgir dûr bixe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢١٩- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَنْ صَامَ رَمَضَانَ إِيمَاناً وَإِحْتِسَاباً، غُفِرَ لَهُ مَا تَقَدَّمَ مِنْ ذَنْبِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1219- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Kesê bi xêra wê bawer be û pê hêvîdar be rojiya meha Remezanê bigre gunehê wî yê derbasbûyî tê bexişandin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٢٠- وَعَنْهُ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا جَاءَ رَمَضَانُ، فُتِّحَتْ أَبْوَابُ الْجَنَّةِ، وَغُلِّقَتْ أَبْوَابُ النَّارِ، وَصُفِّدَتِ الشَّيَاطِينُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1220- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê meha Remezanê tê; deriyê cennetê vedibin, deriyê cehennemê têne girtin û şeytan jî têne girêdan." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٢١- وعَنْهُ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (صُومُوا لِرُؤْيَتِهِ وَأَفْطِرُوا لِرُؤْيَتِهِ، فَإِنْ غَبِيَ عَلَيْكُمْ، فَأَكْمِلُوا عِدَّةَ شَعْبَانَ ثَلاثِينَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةِ مُسْلِم: (فَإِنْ غُمَّ عَلَيْكُمْ فَصُومُوا ثَلَاثِينَ يَوْماً).

1221- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê we heyv dît rojî bigrin û wextê we dîsa heyv dît bifitirin (yanî, bikin cejn/'îd). Vêca eger li we ewrayî be hûn meha Şe'banê bi sî rojî temam bikin." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

Di seneda Muslim de: "Heger êvara bîst û nehê Remezanê ewrayî be hûn sî rojî, rojî bigrin."

## بَابُ الْجُودِ وفِعْل الْمَعْرُوفِ فِي شَهْرِ رَمَضَان
## FEZÎLETA MERDIYA DI HEYVA REMEZANÊ DE

١٢٢٢- وَعَنْ اِبْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ أَجْوَدَ النَّاسِ، وَكَانَ أَجْوَدُ مَا يَكُونُ فِي رَمَضَانَ حِينَ يَلْقَاهُ جِبْرِيلُ، وَكَانَ جِبْرِيلُ يَلْقَاهُ فِي كُلِّ لَيْلَةٍ مِنْ رَمَضَانَ فَيُدَارِسُهُ الْقُرْآنَ، فَلَرَسُولُ الله ﷺ حِينَ يَلقاهُ جِبْرِيلُ أَجْوَدُ بِالْخَيْرِ مِنَ الرِّيحِ الْمُرْسَلَةِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1222- Ji kurê ‘Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) merdtirê însanan bû û xasma di wextê meha Remezanê de Cibrîl rastî wî dihat merdiya wî (s.) zêdetir dibû. Cibrîl her şeva Remezanê dihate bal Pêxemberê Xwedê (s.) û bi hevdu re Qur‘an dixwendin. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) wextê Cibrîl pêrgî wî dibû, di lezkirina bal xêrê ve ji wî bayê ku xêr û bereketê tîne merdtir bû. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٢٣- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا دَخَلَ الْعَشْرُ أَحْيَا اللَّيْلَ، وَأَيْقَظَ أَهْلَهُ، وَشَدَّ الْمِئْزَرَ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1223- Ji ‘Aîşe (r.), got: Wextê dikete dehikê dawiya meha Remezanê, Pêxemberê Xwedê (s.) şev bi îbadetê diborand, ehlê mala xwe hişyar dikir û pêşmalk jî dişidand. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ النَّهْيِ عَنْ تَقَدم رَمَضَان بِصَوْم بَعْدَ نصف شَعْبَان
## MEN‘A JI ROJÎGIRTINA BERIYA REMEZANÊ

١٢٢٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَا يَتَقَدَّمَنَّ أَحَدُكُمْ رَمَضَانَ بِصَوْمِ يَوْمٍ أَوْ يَوْمَيْنِ، إِلَّا أَنْ يَكُونَ رَجُلٌ كَانَ يَصُومُ صَوْمَهُ، فَلْيَصُمْ ذَلِكَ الْيَوْمَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1224- Ji Ebû Hureyrê (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: “Bila tu kes ji we meha Remezanê bi rojiya rojekê yan du rojan pêşta neyne. Bes ew mirovê ku rojiya wî ya ‘adetî rastê wê rojê hatibe, bila ew wê rojê rojî bigre.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٢٥- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَصُومُوا قَبْلَ رَمَضَانَ، صُومُوا لِرُؤْيَتِهِ، وَأَفْطِرُوا لِرُؤْيَتِهِ، فَإِنْ حَالَتْ دُونَهُ غَيَايَةٌ فَأَكْمِلُوا ثَلَاثِينَ يَوْماً). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1225- Ji kurê ‘Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn beriya meha Remezanê rojiyê negrin. Wextê we heyv dît rojiyê bigrin û wextê we dîsa heyv dît bifitirin (yanî, bikin cejn/‘îd). Vêca eger li we ewrayî be hûn sî rojî temam bikin.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١٢٢٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا بَقِيَ نِصْفٌ مِنْ شَعْبَانَ فَلَا تَصُومُوا). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1226- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê nîvê meha Şe‘banê derbas bû hûn êdî rojiyê negrin.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١٢٢٧- وَعَنْ أَبِي الْيَقْظَانِ عَمَّارِ بْنِ يَاسِرٍ ﷺ قَالَ: مَنْ صَامَ الْيَوْمَ الَّذِي يُشَكُّ فِيهِ فَقَدْ عَصَى أَبَا الْقَاسِمِ ﷺ. رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1227- Ji Ebû Yeqzan ‘Emmarê kurê Yasir (r.), got: Ew kesê ku rojiyê bigre di wê roja ku mirov tê de şikber dibe, bêguman ewî bêemriya Ebû Qasim (s.) kiriye.” *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

## بَابُ مَا يُقَالُ عِنْدَ رُؤْيَةِ الْهِلَالِ
## DUAYÊ LI NIK DÎTINA HEYVÊ

١٢٢٨- عَنْ طَلْحَةَ بْنِ عُبَيْدِ اللَّهِ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ إِذَا رَأَى الْهِلَالَ قَالَ: (اللَّهُمَّ أَهِلَّهُ عَلَيْنَا بِالْأَمْنِ وَالْإِيمَانِ، وَالسَّلَامَةِ وَالْإِسْلَامِ، رَبِّي وَرَبُّكَ اللهُ، هِلَالُ رُشْدٍ وَخَيْرٍ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1228- Ji Telheyê kurê ‘Ubeydullah (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) wextê heyv bidîta wiha digot: “Xwedayo! Tu evê heyvê rewnaqdar û ronahî bikî li ser me bi ewlehî û bi baweriyê, bi silametî û bi Îslamê. Heyvê! Rebbê min û Rebbê te, Xwedê ye; tu heyveke bi oxir û qenc bî.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ فَضْل السُّحُور
## FEZÎLETA PAŞÎVÊ

١٢٢٩- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (تَسَحَّرُوا، فَإِنَّ فِي السُّحُورِ بَرَكَةً).
رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1229- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn rabin paşîvê, lewra di xwarina paşîvê de bereket heye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٣٠- وَعَنْ زَيْدِ بْنِ ثَابِتٍ ﷺ قَالَ: تَسَحَّرْنَا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ ثُمَّ قُمْنَا إِلَى الصَّلَاةِ، قِيلَ: كَمْ كَانَ بَيْنَهُمَا؟ قَالَ: قَدْرُ خَمْسِينَ آيَة. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1230- Ji Zeydê kurê Sabit (r.), got: Me digel Pêxemberê Xwedê (s.) paşîv xwar û paşê em rabûn nimêjê (me nimêja sibehê kir). Hate gotin: Di navbera paşîv û nimêjê de çiqas zeman derbas bû? Ewî (r.) got: Bi qasî xwendina pêncî ayetî. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٢٣١- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: كَانَ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ مُؤَذِّنَانِ: بِلَالٌ، وَابْنُ أُمِّ مَكْتُومٍ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ بِلَالاً يُؤَذِّنُ بِلَيْلٍ، فَكُلُوا وَاشْرَبُوا حَتَّى يُؤَذِّنَ ابْنُ أُمِّ مَكْتُوم) قَالَ: وَلَمْ يَكُنْ بَيْنَهُمَا إِلَّا أَنْ يَنْزِلَ هَذَا وَيَرْقَى هَذَا. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1231- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Du mu'ezînên Pêxemberê Xwedê (s.) hebûn: Bilalê Hebeşî û yek jî 'Ebdullahê kurê Ummu Mektûm bû (x.j.w.r.). Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bilal bi şev bang dide, vêca hûn bixwin û vexwin heta Îbn Ummu Mektûm bang da." Rawî dibêje: Di navbera wan her du bangan de bi qasî ku Bilal were jêrê û Îbn Ummu Mektûm jî here jorê zeman hebû." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٢٣٢- وَعَنْ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (فَصْلُ مَا بَيْنَ صِيَامِنَا وَصِيَامِ أَهْلِ الْكِتَابِ أَكْلَةُ السَّحَرِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1232- Ji 'Emrê kurê 'As (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ferqa di navbera rojiya me û ya ehlê kitêban de, xwarina paşîvê ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَعْجِيلِ الْفِطْرِ
## FEZÎLETA LEZKIRINA FITARÊ

١٢٣٣-عَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا يَزَالُ النَّاسُ بِخَيْرٍ مَا عَجَّلُوا الفِطْرَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1233- Ji Sehlê kurê Se'd (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Lezandina xwarina fitarê ji însanan re xêrtir e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٣٤- وَعَنْ أَبِي عَطِيَّةَ قَالَ: دَخَلْتُ أَنَا وَمسْرُوقٌ عَلَى عَائِشَةَ ﷺ، فَقَالَ لَهَا مَسْرُوق: رَجُلَانِ مِنْ أَصْحَابِ مُحَمَّدٍ، ﷺ كِلَاهُمَا لَا يَأْلُو عَنِ الْخَيْرِ: أَحَدُهُمَا يُعَجِّلُ الْمَغْرِبَ وَالإِفْطَارَ، وَالآخَرُ يُؤَخِّرُ الْمَغرِبَ وَالإِفْطَارَ، فَقَالَتْ: مَنْ يُعَجِّلُ الْمَغْرِبَ وَالإِفْطَارَ؟ قَالَ: عَبْدُ اللَّهِ -يَعْنِي اِبْنَ مَسْعُودٍ- فَقَالَتْ: هَكَذَا كَانَ رَسُولُ الله ﷺ يَصْنَعُ. رَوَاهُ مُسْلِم.

1234- Ji Ebû 'Etiyye (r.), got: Ez û Mesrûq em çûn cem Hz. 'Aîşe (r.). Mesrûq ji wê re got: Du heb ji sehabên Hz. Muhemmed (s.) hene û her du jî di xêrê de tu kêmasî û teqsîratiyê nakin. Vêca yek ji wan lezê li nimêja mexrebê û li fitarê dike û yê din jî nimêja êvarê û fitarê derengî dixe. Hz. 'Aîşe (r.) got: Ewê bi lez nimêja êvarê dike û fitarê vedike, kî ye? Mesrûq got: 'Ebdullahê kurê Mes'ûd e. Vêca Hz. 'Aîşe (r.) got: Pêxemberê Xwedê (s.) jî wisa dikir. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢٣٥- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ، قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: قَالَ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ: أَحَبُّ عِبَادِي إِلَيَّ أَعْجَلُهُمْ فِطْراً. رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

1235- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xweda (c.c.) gotiye: "Li ba min, mehbûbtirînê 'ebdê min ew e, yê ku li fitara xwe ecele dike." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

١٢٣٦- وَعَنْ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (إِذَا أَقْبَلَ اللَّيْلُ مِنْ هَهُنَا وَأَدْبَرَ النَّهَارُ مِنْ هَهُنَا، وَغَرَبَتِ الشَّمْسُ، فَقَدْ أَفْطَرَ الصَّائِمُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1236- Ji 'Umerê kurê Xettab (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê şev ji vî alî ve hat, roj ji vî alî ve çû û tav/roj jî çû ava, bila mirovê bi rojî bifitire." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢٣٧- وَعَنْ أَبِي إِبْرَاهِيمَ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ أَبِي أَوْفَى ﷺ قَالَ: سِرْنَا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَهُوَ صَائِمٌ، فَلَمَّا غَرَبَتِ الشَّمْسُ قَالَ لِبَعْضِ الْقَوْمِ: (يَا فُلَانُ انْزِلْ فَاجْدَحْ لَنَا) فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ لَوْ أَمْسَيْتَ، قَالَ: (انْزِلْ فَاجْدَحْ لَنَا) قَالَ: إِنَّ عَلَيْكَ نَهَاراً، قَالَ: (انْزِلْ فَاجْدَحْ لَنَا) قَالَ: فَنَزَلَ فَجَدَحَ لَهُمْ، فَشَرِبَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ ثُمَّ قَالَ: (إِذَا رَأَيْتُمُ اللَّيْلَ أَقْبَلَ مِنْ هَهُنَا فَقَدْ أَفْطَرَ الصَّائِمُ) وَأَشَارَ بِيَدِهِ قِبَلَ الْمَشْرِقِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1237- Ji Ebû Îbrahîm 'Ebdullahê kurê Ebû Ewfa (r.), got: Em digel Pêxemberê Xwedê (s.) çûne seferê û ew (s.) jî bi rojî bû. Wextê roj çû ava, ewî (s.) ji hinekan re got: "Filan kes, tu berjêr be û ji me re poxînê tev li avê bike (xwarinê amade bike)." Ewî mirovî got: Ya Pêxemberê Xwedê! Xwezî li te bibûya şev? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu berjêr be û ji me re poxînê tev li avê bike (xwarinê amade bike)." Ewî mirovî got: Ya Pêxemberê Xwedê! Hê roj e? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu berjêr be û ji me re poxînê tev li avê bike (xwarinê amade bike)." Rawî dibêje: Ew mirov berjêr bû û ji wan re poxîn tev li avê kir. Pêxemberê Xwedê (s.) ji wê vexwar û paşê jî got: "Wextê we dît ku şev ji vî aliyî ve hat, mirovê bi rojî difitire." Û bi destê xwe jî aliyê rojhilatê nîşan dida. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٣٨- وَعَنْ سَلْمَانَ بْنِ عَامِرٍ الضَّبِّيِّ الصَّحَابِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِذَا أَفْطَرَ أَحَدُكُمْ، فَلْيُفْطِرْ عَلَى تَمْرٍ، فَإِنْ لَمْ يَجِدْ، فَلْيُفْطِرْ عَلَى مَاءٍ فَإِنَّهُ طَهُورٌ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1238- Ji Selmanê kurê 'Amirê Debbî yê Sehabî (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Wextê yek ji we fitara xwe vekir bila bi xurmê veke. Heger xurme nedît bila bi avê fitara xwe veke, lewra av paqij e." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١٢٣٩- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُفْطِرُ قَبْلَ أَنْ يُصَلِّيَ عَلَى رُطَبَاتٍ،

فَإِنْ لَمْ تَكُنْ رُطَبَاتٌ فَتُمَيْرَاتٌ، فَإِنْ لَمْ تَكُنْ تُمَيْرَاتٌ حَسَا حَسَوَاتٍ مِنْ مَاءٍ. رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1239- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) beriya ku nimêj bike bi çend xurmên ter fitara xwe vedikir. Heger xurmên ter nedîta bi çend lib xurmên hişk fitar vedikir. Heger ew jî nedîtiba bi çend qurt av fitar dikir. *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ أَمْرِ الصَّائِمِ بِحِفْظِ لِسَانِهِ وَجَوَارِحِهِ
## PARASTINA MIROVÊ BI ROJÎ BI ZIMANÊ XWE

١٢٤٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا كَانَ يَوْمُ صَوْمِ أَحَدِكُمْ، فَلَا يَرْفُثْ وَلَا يَصْخَبْ، فَإِنْ سَابَّهُ أَحَدٌ، أَوْ قَاتَلَهُ، فَلْيَقُلْ: إِنِّي صَائِمٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1240- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê yek ji we rojî bû, bila axaftinên pişêw neke û bila nexeyîde. Vêca eger yekî jê re dijûn kir yan pê re şer kir bila bêje: Ez bi rojî me." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٤١- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (مَنْ لَمْ يَدَعْ قَوْلَ الزُّورِ والعَمَلَ بِهِ، فَلَيْسَ لِلهِ حَاجَةٌ فِي أَنْ يَدَعَ طَعَامَهُ وَشَرَابَهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1241- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxember (s.) gotiye: "Kesê gotinên derew û kiryarên bi derew neterikîne, tu hewceya Xwedê pê tune ku xwarin û vexwarinê biterikîne." *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابٌ فِي مَسَائِلَ مِنَ الصَّوْمِ
## ÇEND MESELÊN ROJIYÊ

١٢٤٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِذَا نَسِيَ أَحَدُكُمْ، فَأَكَلَ، أَوْ شَرِبَ، فَلْيُتِمَّ صَوْمَهُ، فَإِنَّمَا أَطْعَمَهُ اللهُ وَسَقَاهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1242- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Wextê yekî ji we jibîr kir tiştek xwar û yan vexwar, bila rojiya xwe temam bike. Lewra Xwedê bi wî daye xwarin û vexwarin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٤٣- وَعَنْ لَقِيطِ بْنِ صَبِرَةَ ﷺ قَالَ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَخْبِرْنِي عَنِ الْوُضُوءِ؟ قَالَ: (أَسْبِغِ الْوُضُوءَ، وَخَلِّلْ بَيْنَ الأَصَابِعِ، وَبَالِغْ فِي الإِسْتِنْشَاقِ إِلَّا أَنْ تَكُونَ صَائِماً). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1243- Ji Leqîtê kurê Sebire (r.), got: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Min bi destnimêjê agahdar bike? Ewî (s.) got: "Tu destnimêja xwe tam bigre, nav tiliyê xwe bifirikîne û wextê tu ne bi rojîbî di îstinşaqê de (avkişandina poz) mubalexe bike." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١٢٤٤- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ، قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يدْرِكُهُ الفَجْرُ وَهُوَ جُنُبٌ مِنْ أَهْلِهِ، ثُمَّ يَغْتَسِلُ وَيَصُومُ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1244- Ji 'Aîşe (r.), got: Carna Pêxemberê Xwedê (s.) bi cenabet lê dibû sibeh, radibû serê xwe dişûşt û rojî didomand. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٤٥- وَعَنْ عَائِشَةَ وَأُمِّ سَلَمَةَ ﷺ قَالَتَا: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُصْبِحُ جُنُباً مِنْ غَيْرِ حُلُمٍ، ثُمَّ يَصُومُ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1245- Ji 'Aîşe û ji Ummu Seleme (r.), gotin: Carina Pêxemberê Xwedê (s.) bi cenabeta ji xeynê cenabeta bi îhtilamê lê dibû sibeh û paşê jî rojiya xwe digirt. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ بَيَانِ فَضْلِ صَوْمِ الْمُحَرَّمِ وَشَعْبَانَ وَالأَشْهُرُ الْحُرم

## ROJIYA MUHERREMÊ, ŞE'BANÊ Û MEHÊN HERAM

١٢٤٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَفْضَلُ الصِّيَامِ بَعْدَ رَمَضَانَ شَهْرُ اللهِ الْمُحَرَّمُ، وَأَفْضَلُ الصَّلَاةِ بَعْدَ الْفَرِيضَةِ صَلَاةُ اللَّيْلِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1246- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Piştî meha Remezanê xêrtirînê rojiyan, rojiya meha Xwedê ku meha Muherremê ye. Û piştî nimêjê ferz jî xêrtirînê nimêjan, nimêja şevê ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢٤٧- وَعَنْ عَائِشَةَ، ﷺ، قَالَتْ: لَمْ يَكُنِ النَّبِيُّ ﷺ يَصُومُ مِنْ شَهْرٍ أَكْثَرَ مِنْ شَعْبَانَ، فَإِنَّهُ

  

كَانَ يَصُومُ شَعبَانَ كُلَّه.

وَفِي رِوَايَةٍ: كَانَ يَصُومُ شَعْبَانَ إِلَّا قَلِيلاً. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1247- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) di tu mehî de ji meha Şe'banê zehftir rojî nedigirt. Ewî (s.) meha Şe'banê hemû bi rojî derbas dikir.

Di senedekê de: Pêxemberê Xwedê (s.) tiştekî hindik xaric meha Şe'banê bi rojî derbas dikir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٤٨ - وَعَنْ مُجِيبَةَ الْبَاهِلِيَّةِ عَنْ أَبِيهَا أَوْ عَمِّهَا ﷺ أَنَّهُ أَتَى رَسُولَ اللَّهِ ﷺ ثُمَّ انْطَلَقَ فَأَتَاهُ بَعْدَ سَنة، وَقَدْ تَغَيَّرَتْ حَالُهُ وَهَيْئَتُهُ، فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَمَا تَعْرِفُنِي؟ قَالَ: (وَمَنْ أَنْتَ؟) قَالَ: أَنَا البَاهِلِيُّ الَّذِي جِئْتُكَ عَامَ الأَوَّلِ، قَالَ: (فَمَا غَيَّرَكَ؟) وَقَدْ كُنْتَ حَسَنَ الْهَيْئَةِ؟) قَالَ: مَا أَكَلْتُ طَعَاماً مُنْذُ فَارَقْتُكَ إِلَّا بِلَيْلٍ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (عَذَّبْتَ نَفسَكَ) ثُمَّ قَالَ: (صُمْ شَهْرَ الصَّبْرِ، وَيَوماً مِنْ كُلِّ شَهرٍ) قَالَ: زِدْنِي، فَإِنَّ بِي قوَّةً، قَالَ: (صُمْ يَوْمَيْنِ) قَالَ: زِدْنِي، قَالَ: (صُمْ ثَلاثَةَ أَيَّام) قَالَ: زِدْنِي، قَالَ: (صُمْ مِنَ الْحُرُمِ وَاتْرُكْ، صُمْ مِنَ الْحُرُمِ وَاتْرُكْ، صُمْ مِنَ الْحُرُمِ وَاتْرُكْ) وَقَالَ بِأَصَابِعِهِ الثَّلاثِ فَضَمَّهَا، ثُمَّ أَرْسَلَهَا. رَوَاهُ أَبُو دَاوود.

1248- Ji Mucîbeyê Bahiliyye (r.), ewî jî ji bavê xwe yan jî ji apê xwe rîwayet kiriye ku ew hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û paşê jî zivîrî çû mala xwe. Piştî salekê ku rewş û şiklê wî guherî bûbû dîsa hate bal Pêxemberê Xwedê (s.). Vêca ewî got: Ya Pêxemberê Xwedê! Qey te ez nas nekirim? Ewî (s.) got: "Tu kî yî?" Ewî jî got: Ez Bahilî me, par hatibûm cem te. Pêxemberê Xwedê (s.) got: Çi li te hatiye, ya rastî şiklê te rind bû? Ewî jî got: Hingê ez ji te veqetiyam çûm heta îro min xwarin nexwar; bes bi şev tenê min dixwar. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Te nefsa xwe daye 'ezabê." Paşê got: "Tu meha sebrê/Remezanê rojî bigre û ji her mehên din jî rojekê rojî bigre." Ewî kesî got: Tu ji min re zêde bike, lewra hêz û quweta min heye. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Du rojan rojî bigre." Ewî mirovî got: Tu ji min re zêde bike. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Sê rojan rojî bigre." Ewî mirovî got: Tu ji min re zêde bike. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu ji mehên heram (şer tê de heram e: Receb, Zilkade, Zilhicce û Muherrem)

rojî bigre û bifitire, tu ji mehên heram rojî bigre û bifitire û tu ji mehên heram rojî bigre û bifitire." Rawî dibêje: Pêxemberê Xwedê (s.) bi her sê tiliyê xwe nîşan dida û ew dimiçandin û dîsa vedikirin. *Ebû Dawûd riwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ الصَّوْمِ فِي الْعَشْرِ الأَوَّلِ مِنْ ذِي الْحِجَّةِ
## ROJIYA DEHIKÊ 'EYDA HECIYAN

١٢٤٩- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا مِنْ أَيَّامٍ الْعَمَلُ الصَّالِحِ فِيهَا أَحَبُّ إِلَى اللَّهِ مِنْ هَذِهِ الأَيَّامِ يَعْنِي: أَيَّامَ الْعشْرِ) قَالُوا: يَا رَسُول اللَّهِ وَلَا الْجِهَادُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ؟ قَالَ: (وَلَا الْجِهَادُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ، إِلَّا رَجُلٌ خَرَجَ بِنَفْسِهِ، وَمَالِهِ، فَلَمْ يَرْجِعْ مِنْ ذَلِكَ بِشَيْءٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1249- Ji kurê 'Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Li ba Xwedê, tu roj bi qasî van rojan, emelê qenc tê de ne mehbûbtir e; yanî, deh rojên pêşîn. Sehabiyan gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Cîhada di rêya Xwedê de jî ne hezjêkirîtir e? Pêxemberê Xwedê (s.) got: Cîhada di rêya Xwedê de jî ji wan rojan hezjêkertin nîne. Bes ew mirovê bi can û malê xwe derkeve û ji evan bi tiştekî venegere, ew ew ne tê de." *Buxari riwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ صَوْمِ يومِ عرفة وعاشوراء وتاسوعاء
## ROJIYA ROJA 'EREFÊ Û 'AŞURAYÊ Û TASÛA'YÊ

١٢٥٠- عَنْ أَبِي قَتَادَةَ ﷺ قَالَ: سُئِلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنْ صَوْمِ يَوْمِ عَرَفَةَ؟ قَالَ: (يُكَفِّرُ السَّنَةَ الْمَاضِيَةَ وَالْبَاقِيَةَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1250- Ji Ebû Qetade (r.), got: Ji Pêxemberê Xwedê (s.) pirsa rojiya roja 'Erefê hate kirin. Ewî (s.) got: "Dibe kefaretê gunehê sala derbasbûyî û sala mayî (yu ku dê bêt)." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢٥١- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ صَامَ يَوْمَ عَاشُورَاءَ وَأَمَرَ بِصِيَامِهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1251- Ji 'Ebdullahê kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) roja 'Aşurayê rojî digirt û emrê rojî girtina wê jî dikir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٥٢- وَعَنْ أَبِي قَتَادَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ سُئِلَ عَنْ صِيَامِ يَوْمِ عَاشُورَاءَ؟ فَقَالَ: (يُكَفِّرُ السَّنَةَ الْمَاضِيَةَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1252- Ji Ebû Qetade (r.) hatiye rîwayetkirin ku ji Pêxemberê Xwedê (s.) pirsa rojiya roja 'aşurayê hate kirin. Ewî (s.) got: "Dibe kefaretê gunehê sala derbasbûyî." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢٥٣- وعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَئِنْ بَقِيتُ إِلَى قَابِلٍ لأَصُومَنَّ التَّاسِعَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1253- Ji 'Ebdullahê kurê 'Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wellah, eger ez bimînim heta sala bê, ezê roja nehê meha Muherremê rojî bigrim." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ إِسْتِحْبَاب صَوْم سِتَّة أَيَّام مِنْ شَوَّال

## MUSTEHEBBÛNA ROJÎGIRTINA ŞEŞ ROJÊN MEHA ŞEWALÊ

١٢٥٤- عَنْ أَبِي أَيوبَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ صَامَ رَمَضَانَ، ثُمَّ أَتْبَعَهُ سِتًّا مِنْ شَوَّالٍ، كَانَ كَصِيَامِ الدَّهْرِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1254- Ji Ebû Eyyûbê (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî meha Remezanê rojî bigre û şeş rojên Şewalê jî ji pey wê bigre her wekî ewî temamê salê rojî girtiye." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ إِسْتِحْبَاب صَوْم الاثْنَيْن وَالْخَمِيس

## MUSTEHEBBÛNA ROJÎGIRTINA ROJA DUŞEM Û PÊNCŞEMÊ

١٢٥٥- عَنْ أَبِي قَتَادَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ سُئِلَ عَنْ صَوْمِ يَوْمِ الاثْنَيْنِ؟ فَقَالَ: (ذَلِكَ يَوْمٌ وُلِدَتُ فِيهِ، وَيَوْمٌ بُعِثْتُ، أَوْ (أُنْزِلَ عَلَيَّ فِيهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1255- Ji Ebû Qetade (r.) hatiye rîwayetkirin ku ji Pêxemberê Xwedê (s.) pirsa rojiya roja duşemê hate kirin. Ewî (s.) got: "Ew, rojeke wisa ye ez di wê rojê de hatime dunyayê û ez di wê rojê de bûm pêxember, yan jî

wehî ji min re nazil bû." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢٥٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (تُعْرَضُ الأَعْمَالُ يَوْمَ الاثْنَيْنِ وَالْخَمِيسِ، فَأُحِبُّ أَنْ يُعْرَضَ عَمَلِي وَأَنَا صَائِمٌ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

1256- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Kar û kiryar di roja duşem û pêncşemê de têne pêşkeş kirin. Ez hez dikim ku ez bi rojî bim kar û kiryarê min bên pêşkeş kirin." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

١٢٥٧- وَعَنْ عَائِشَةَ، ﷺ، قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَتَحَرَى صَوْمَ الاثْنَيْنِ وَالْخَمِيسِ.

رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1257- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) lê dixebitî ku roja duşem û pêncşemê rojî bigre. *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ إِسْتِحْبَاب صَوْم ثَلاَثَة أَيَّام مِنْ كُلِّ شَهْر

## ROJÎGIRTINA SÊ ROJAN JI HER MEHÊ

وَالأَفْضَل صَوْمُهَا فِي أَيَّامِ الْبِيض، وَهِي الثَّالِثَ عَشَر وَالرَّابِعَ عَشَر وَالْخَامِسَ عَشَرَ، وَقِيلَ: الإِثْنَي عَشَرَ وَالثَّالِثَ عَشَرَ وَالرَّابِعَ عَشَرَ، وَالصَّحِيحُ الْمَشْهُورُ هوَ الأَوَّلُ.

Ya xêrtir ew e ku rojiya wan meha di rojê Bîd/Spî de bin. Rojên Bîdê: Rojên sêzdeh, çardeh û panzdehan e. (Li gor teqwîma qemerî.) Hinekan jî gotiye: Ew, rojên duwazdeh, sêzdeh û çardehan e. Lê ya sehîh û navdar ya ewilê ye.

١٢٥٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: أَوْصَانِي خَلِيلِي ﷺ بِثَلاَث: (صِيَامِ ثَلاثَةِ أَيَّامٍ مِنْ كُلِّ شَهْرٍ، وَرَكْعَتَي الضُّحَى، وَأَنْ أُوتِرَ قَبْلَ أَنْ أَنَامَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1258- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Dostê min Hz. Muhemmed (s.) şîret li min kir bi kirina sê tiştan: Bi rojîgirtina sê rojan ji her mehê, bi kirina du rekat nimêja duhayê û yek jî beriya ku ez razêm nimêja witrê bikim. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٥٩- وَعَنْ أَبِي الدَّرْدَاءِ ﷺ قَالَ: أَوْصَانِي حَبِيبِي ﷺ بِثَلَاث لَنْ أَدَعَهُنَّ مَا عِشْتُ:

  

بِصِيَامِ ثَلَاثَةِ أَيَّامٍ مِنْ كُلِّ شَهْرٍ، وَصَلَاةِ الضُّحَى، وَبِأَنْ لَا أَنَامَ حَتَّى أُوتِرَ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1259- Ji Ebû Derda (r.), got: Dostê min Hz. Muhemmed (s.) şîret li min kir bi kirina sê tiştên ku heta ez sax bim ez wan neterikînim: Bi rojî girtina sê rojan ji her mehê, bi kirina nimêja duhayê û yek jî heta ez nimêja witrê nekim ranezêm. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢٦٠ - وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (صَوْمُ ثَلَاثَةِ أَيَّامٍ مِنْ كُلِّ شَهْرٍ: صَوْمُ الدَّهْرِ كُلِّهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1260- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Rojî girtina sê rojan ji her mehê wekî rojî girtina temamê salê ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٦١ - وَعَنْ مُعَاذَةَ الْعَدَوِيَّةِ أَنَّهَا سَأَلَتْ عَائِشَةَ ﷺ: أَكَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَصُومُ مِنْ كُلِّ شَهْرٍ ثَلَاثَةَ أَيَّامٍ؟ قَالَتْ: نَعَمْ، فَقُلْتُ: مِنْ أَيِّ الشَّهْرِ كَانَ يَصُومُ؟ قَالَتْ: لَمْ يَكُنْ يُبَالِي مِنْ أَيِّ الشَّهْرِ يَصُومُ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1261- Ji Mu'azeteya 'Edewiye (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewê ji Hz. 'Aîşe (r.) pirsî: Gelo, Pêxemberê Xwedê (s.) ji her mehê sê roj rojî digirt? Ewê (r.) got: Belê. Mu'azete dibêje: Min got: Kîjan rojên mehê rojî digirt? Ewê (s.) got: Pêxemberê Xwedê (s.) tu roj kifş nekiribû ku rojî bigre. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢٦٢ - وَعَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا صُمْتَ مِنَ الشَّهْرِ ثَلَاثاً، فَصُمْ ثَلَاثَ عَشْرَةَ، وَأَرْبَعَ عَشْرَةَ، وَخَمْسَ عَشْرَةَ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1262- Ji Ebû Zerr (r.) hatiye rîwayetkirin wî got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê te ji mehekê sê roj rojî girt. Tu roja sêzdeh, çardeh û panzdehan bigre." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye; hedîs hesen e.*

١٢٦٣ - وَعَنْ قَتَادَةَ بْنِ مِلْحَانَ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَأْمُرُنَا بِصِيَامِ أَيَّامِ الْبِيضِ: ثَلَاثَ عَشْرَةَ، وَأَرْبَعَ عَشْرَةَ، وَخَمْسَ عَشْرَةَ. رَوَاهُ أَبُو دَاوُد.

1263- Ji Qetadeyê kurê Milhan (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) emrê

  

me dikir bi rojî girtina rojên Bîd: Rojên sêzdeh, çardeh û panzdehan. *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

١٢٦٤- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لَا يُفْطِرُ أَيَّامَ الْبِيضِ فِي حَضَرٍ وَلَا سَفَرٍ. رَوَاهُ النَّسَائِي بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

1264- Ji kurê 'Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) di rojên Bîdê de nedifitirî; ne li malê û ne jî di rêwîtiyê de. (Her bi rojî bû). *Nesaî bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ مَنْ فَطَّرَ صَائِماً

## FEZÎLETA FITARDAYINÊ

١٢٦٥- عَنْ زَيْدِ بْنِ خَالِدٍ الْجُهَنِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: مَنْ فَطَّرَ صَائِماً، كَانَ لَهُ مِثْلُ أَجْرِهِ، غَيْرَ أَنَّهُ لَا يَنْقُصُ مِنْ أَجْرِ الصَّائِمِ شَيءٌ. رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وقال: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1265- Ji Zeydê kurê Xalidê Cuhenî (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Kesê miroveki bi rojî bifitirîne, wekî xêra wî yê bi rojî xêr ji wî yê difitirîne re jî hasil dibe bê kêmbûna tiştekî ji xêra wî yê bi rojî." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١٢٦٦- وَعَنْ أُمِّ عُمَارَةَ الأَنْصَارِيَّةِ، ﷺ، أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ دَخَلَ عَلَيْهَا، فَقَدَّمَتْ إِلَيْهِ طَعَاماً، فَقَالَ: (كُلِي) فَقَالَتْ: إِنِّي صَائِمَةٌ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ الصَّائِمَ تُصَلِّي عَلَيْهِ الْمَلَائِكَةُ إِذَا أُكِلَ عِنْدَهُ حَتَّى يَفْرُغُوا) وَرُبَّمَا قَالَ (حَتَّى يَشْبَعُوا). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1266- Ji Ummu 'Umareya Ensarî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) çû serlêdana wê. Vêca ewê jî ji Pêxemberê Xwedê (s.) re xwarin anî. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu jî bixwe." Ewê got: Ez bi rojî me. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bêguman însanê bi rojî, wextê li cem wî xwarin bê xwarin heta wanê xwarinê dixwun ji ser xwarinê rabin –pir caran digot: Heta ew têr bixwin– milyaket ji wî re dua dikin." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye; hedîs hesen e.*

  

١٢٦٧- وَرَوَى أَنَسٍ ﷺ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ جَاءَ إِلَى سَعْدِ بْنِ عُبَادَةَ ﷺ فَجَاءَ بِخُبْزٍ وَزَيْتٍ، فَأَكَلَ، ثُمَّ قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (أَفْطَرَ عِنْدَكُمُ الصَّائِمُونَ، وَأَكَلَ طَعَامَكُمُ الأَبْرَارُ وَصَلَّتْ عَلَيْكُمُ الْمَلَائِكَةُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1267- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) hate cem Se'dê kurê 'Ubade (r.) û Se'd jî nanek û hinek jî rûnê zeyûnê derxist. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) ew nan û rûn xwar û paşê jî got: "Li ser sifra we mirovê bi rojî bifitirin, mirovê qenc xwarina we bixwin û milyaket jî ji we re dua bikin."

*Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

# كِتَاب الإِعْتِكَاف
# KITÊBA ÎTIKAFÊ

## بَابُ فَضْل الإِعْتِكَافِ
## RAWESTANDINA DI MIZGEFTÊ DE

١٢٦٨ - عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَعْتَكِفُ الْعَشْرَ الأَوَاخِرَ مِنْ رَمَضَانَ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1268- Ji Îbnu 'Umerê kurê Xettab (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) deh rojên dawiya meha Remezanê di î'tikafê de derbas dikirin. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٢٦٩ - وَعَنْ عَائِشَةَ، ﷺ، أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يَعْتَكِفُ الْعَشْرَ الأَوَاخِرَ مِنْ رَمَضَانَ، حَتَّى تَوَفَّاهُ الله تَعَالَى، ثُمَّ اِعْتَكَفَ أَزْوَاجُهُ مِنْ بَعْدِهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1269- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) heta wefat kir di her dehê dawiya meha Remezanê de diket î'tikafê. Piştî wefata wî (s.), vêca ezwacên wî diketin î'tikafê. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٧٠ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يَعْتَكِفُ فِي كُلِّ رَمَضَانَ عَشْرَةَ أَيَّام، فَلَمَّا كَانَ الْعَامُ الَّذِي قُبِضَ فِيهِ اِعْتَكَفَ عِشْرِينَ يَوْماً. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1270- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxember (s.) her meha Remezanê de deh rojan diket î'tikafê, lê sala ku wê di wê salê de wefat bikira bîst rojan kete î'tikafê. *Buxarî rîwayet kiriye.*

# كِتَاب الْحَجّ
# KITÊBA HECÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَلِلهِ عَلَى النَّاسِ حِجُّ الْبَيْتِ مَنِ اسْتَطَاعَ إِلَيْهِ سَبِيلاً وَمَنْ كَفَرَ فَإِنَّ الله غَنِيٌّ عَنِ الْعَالَمِينَ﴾

"Ji bona Xwedê ferz e li ser însanên ku bikarbin/maldar bin qesda Beytê bikin. Heçî yê gawir be (baweriyê bi Xwedê neyne), vêca bi rastî Xweda te'ala hewcebûna wî ji 'alemê re tune."[1]

١٢٧١- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ (قَالَ: بُنِيَ الإِسْلَامُ عَلَى خَمْسٍ: شَهَادَةُ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَأَنَّ مُحَمَّداً رَسُولُ اللَّهِ، وَإِقَامِ الصَّلَاةِ، وَإِيتَاءِ الزَّكَاةِ، وَحَجِّ الْبَيْتِ، وَصَوْمِ رَمَضَانَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1271- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Îslam li ser pênc bingehan hatiye ava kirin: Şehdedayina ku ji xeynê Xwedê tu îlah tune û Hz. Muhemmed jî qasidê wî ye, kirina nimêjê, dayina zekatê, çûyina hecê û girtina rojiya remezanê." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

1 Alî 'Îmran, 3/97.

١٢٧٢- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: خَطَبَنَا رَسُولُ الله ﷺ فَقَالَ: (يَا أَيُّهَا النَّاسُ قَدْ فَرَضَ الله عَلَيْكُمُ الحَجَّ فَحُجُّوا) فَقَالَ رَجُلٌ: أَكُلَّ عَامٍ يَا رَسُولَ الله؟ فَسَكَتَ، حَتَّى قَالَهَا ثَلاثاً، فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَوْ قُلْتُ: نَعَمْ، لَوَجَبَتْ، وَلَمَا اسْتَطَعْتُمْ) ثُمَّ قَالَ: (ذَرُونِي مَا تَرَكْتُكُمْ، فَإِنَّمَا هَلَكَ مَنْ كَانَ قَبْلَكُمْ بِكَثْرَةِ سُؤَالِهِمْ، وَاخْتِلافِهِمْ عَلَى أَنْبِيَائِهِمْ، فَإِذَا أَمَرْتُكُمْ بِشَيْءٍ فَأْتُوا مِنْهُ مَا اسْتَطَعْتُمْ، وَإِذَا نَهَيْتُكُمْ عَنْ شَيْءٍ فَدَعُوهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1272- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji me re xutbe xwend û got: “Gelî mirovan! Bêguman Xweda te‘ala hec li ser we ferz kiriye. Vêca hûn jî hecê bikin.” Li ser vê gotinê mirovekî got: Ya Pêxemberê Xwedê, her sal? Pêxemberê Xwedê (s.) dengê xwe nekir, heta ku ewî mirovî ev gotin cara sisyan tekrar kir, vêca Pêxemberê Xwedê (s.) ji got: “Heger min bigota –belê– dê wisa wacib bibûya û we jî nedikarî hûn bikin.” Û Paşê jî got: “Wextê min dengê xwe nekir hûn jî dev ji min berdin. Lewra ummetê beriya we bes bi sedem pir pirsiyar û bi sedem îxtilafa di derheqê pêxemberê xwe de çûne helakê. Vêca wextê min tiştek emrê we kir hûn eger bikaribin ewê bikin û wextê min hûn ji tiştek men‘ kir dev ji wê berdin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٧٣- وَعَنْهُ قَالَ: سُئِلَ النَّبِيُّ ﷺ أَيُّ الْعَمَلِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: (إِيمَانٌ بِاللَّهِ وَرَسُولِهِ) قِيلَ: ثُمَّ مَاذَا؟ قَالَ: (الْجِهَادُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ) قِيلَ: ثُمَّ مَاذَا؟ قَالَ: (حَجٌّ مَبْرُورٌ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1273- Dîsa ji wî (r.), got: Ji Pêxember (s.) hate pirs kirin ku: Kîjan kar û kiryar çêtir e? Ewî (s.) got: “Baweriya bi Xwedê û bi Pêxemberê wî ye.” Hate gotin: Paşê kîjan e? Ewî (s.) got: “Cîhada di rêya Xwedê de ye.” Dîsa hate gotin: Paşê kîjan e? Ewî (s.) got: “Heca meqbûl e.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٧٤- وَعَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ حَجَّ، فَلَمْ يَرْفُثْ، وَلَمْ يَفْسُقْ، رَجَعَ كَيَوْمَ وَلَدَتْهُ أُمُّهُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1274- Dîsa ji wî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Kî hec bike û vêca di dema hecê de peyvên bêedeb nebêje û gunehê mezin neke, wekî roja ku dayika wî ew aniye dunyayê bê guneh vedigere mala xwe.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٧٥- وَعَنْهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (العُمْرَةُ إِلَى العُمْرَةِ كَفَّارَة لِمَا بَيْنَهُمَا، وَالْحَجُّ الْمَبْرُورُ لَيْسَ لَهُ جَزَاءٌ إِلَّا الْجَنَّةَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1275- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "'Umre heta 'umrê dibe kefaret ji gunehên ku di navbera wan de tên kirin û heca mebrûr (yê hatiye qebûlkirin) jî xelata wê bes cennet e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٧٦- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: قُلْتُ: يَا رَسُول الله، نَرَى الْجِهَادَ أَفْضَلَ الْعَمَلِ، أَفَلَا نُجَاهِدُ؟ فَقَالَ: (لَكِنَّ أَفضَلُ الْجِهَادِ حَجٌّ مَبرُورٌ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1276- Ji 'Aîşe (r.), got: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Em wisa dizanin ku xêrtirînê 'emelan cîhad e, gelo em neçine cîhadê? Ewî (s.) got: "Lê xêrtirînê cîhadan jî, heca meqbûl e." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٢٧٧- وَعَنْهَا: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَا مِنْ يَوْمٍ أَكْثَرَ مِنْ أَنْ يُعْتِقَ الله فِيهِ عَبْداً مِنَ النَّارِ مِنْ يَوْمِ عَرَفَةَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1277- Dîsa ji wê (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê gotiye: Roja ku Xwedê te'ala di wê de zehftir 'ebdê xwe ji êgir azad dike roja 'Erefê ye. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢٧٨- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﵄ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (عُمْرَةٌ فِي رَمَضَانَ تَعْدِلُ حَجَّةً- أَوْ حَجَّةً مَعِي-). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1278- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "'Umreyeke di meha Remezanê de beramberî hecekê –û yan jî hecekê bi min re– ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٧٩- وَعَنْهُ: أَنَّ إمْرَأَةً قَالَتْ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، إِنَّ فَرِيضَةَ الله عَلَى عِبَادِهِ فِي الْحَجِّ أَدْرَكتْ أَبِي شَيْخاً كَبِيراً، لَا يَثْبتُ عَلَى الرَّاحِلَةِ، أَفَأَحُجُّ عَنْهُ؟ قَالَ: (نَعَمْ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1279- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku jinekê got: Ya Pêxemberê Xwedê! Heca ku li ser ebd ferz, di dewra kalîtiyê de rastî bavê min hat,

ku ew jî nikare li ser heywanê bisekine, gelo ez dikarim li şûna wî hecê bikim? Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Belê.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٨٠- وَعَنْ لَقِيطِ بْنِ عَامِرٍ ﷺ أَنَّهُ أَتَى النَّبِيَّ ﷺ فَقَالَ: إِنَّ أَبِي شَيْخٌ كَبِيرٌ لَا يَسْتَطِيعُ الْحَجَّ، وَلَا الْعُمْرَةَ، وَلَا الظَّعَنَ؟ قَالَ: (حُجَّ عَنْ أَبِيكَ وَاعْتَمِرْ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِيُّ، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1280- Ji Leqîtê kurê ‘Amir (r.) hatiye rîwayetkirin ku ew hate bal Pêxember (s.) û got: Bêguman bavê min kal e û nikare ne hecê bike, ne jî ‘umreyê bike û ne jî rêwîtiyê bike? Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: “Tu li şûna bavê xwe ve hecê jî bike û ‘umreyê jî bike.” *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١٢٨١- وَعَنِ السَّائِبِ بْنِ يَزِيدَ ﷺ قَالَ: حُجَّ بِي مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي حَجَّةِ الوَدَاعِ، وَأَنَا ابْنُ سَبْعِ سِنِينَ). رَوَاهُ الْبُخَارِيُّ.

1281- Ji Sa’ibê kurê Yezîd (r.), got: Di Heccetul-Weda‘ê de digel Pêxemberê Xwedê (s.) hec bi min dane kirin ku ez wî çaxî heft salî bûm. *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٢٨٢- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ لَقِيَ رَكْباً بِالرَّوْحَاءِ، فَقَالَ: (مَنِ الْقَوْمُ؟) قَالُوا: الْمُسْلِمُونَ. قَالُوا: مَنْ أَنْتَ؟ قَالَ: (رَسُولُ اللَّهِ) فَرَفَعَتِ إِمْرَأَةٌ صَبِيّاً فَقَالَتْ: أَلِهَذَا حَجٌّ؟ قَالَ: (نَعَمْ، وَلَكِ أَجْرٌ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1282- Ji kurê ‘Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) di Rewhayê de rastî karwanekî hat û got: “Hûn kî ne?” Ewan gotin: Em misilman in. Vêca ewan pirsîn: Tu kî yî? Ewî (s.) got: “Ez Pêxemberê Xwedê me.” Li ser vê gotinê jinikekê zarokek rakir û got: Ji bo evî jî hec heye? Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Belê, ji te re jî xêr heye.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢٨٣- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ حَجَّ عَلَى رَحْلٍ، وَكَانَتْ زَامِلَتَهُ. رَوَاهُ الْبُخَارِيُّ.

1283- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) li ser deveykê hec kir û xwarin û vexwarina wî jî li ser wê bû. *Buxarî riwayet kiriye.*

١٢٨٤- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: كَانَتْ عُكَّاظُ وَذُو الْمَجَازِ أَسْوَاقاً فِي الْجَاهِلِيَّةِ، فَتَأَثَّمُوا أَنْ يَتَّجِرُوا فِي الْمَوَاسِمِ، فَنَزَلَتْ: (لَيْسَ عَلَيْكُمْ جُنَاحٌ أَنْ تَبْتَغُوا فَضْلاً مِن رَبِّكُمْ)-البقرة١٩٨) فِي مَوَاسِمِ الْحَجِّ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1284- Ji kurê 'Ebbas (r.), got: Di dewra cahiliyetê de 'Ukkaz û Zul-Mecaz cihê bazara mezin bûn. Vêca ehlê Mekkeyê di dem û demsalê hecê de tirsa ji gunehkarbûnê ji bazirganiyê direvîn. Li ser vê yekê ev ayet nazil bû: "Tu guneh ji bo we tuneye ku hûn (di dem û mewsimê hecê de) kerem û xêran ji Xwedayê xwe bixwazin. (Ango, bazirganiyê bikin). (Beqere: 198)" *Buxarî riwayet kiriye.*

# كِتَابُ الْجِهَاد
# KITÊBA CÎHADÊ

## بَابُ فَضْلِ الْجِهَاد
## FEZÎLETA CÎHADÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَقَاتِلُوا الْمُشْرِكِينَ كَافَّةً كَمَا يُقَاتِلُونَكُمْ كَافَّةً وَاعْلَمُوا أَنَّ اللَّهَ مَعَ الْمُتَّقِينَ﴾

"Hûn hemû pêkve şerê muşrikan bikin, wekî ku ew hemû pêkve şerê we dikin û hûn bizanin Xwedê digel parêzgeran e."[1]

﴿كُتِبَ عَلَيْكُمُ الْقِتَالُ وَهُوَ كُرْهٌ لَكُمْ وَعَسَى أَنْ تَكْرَهُوا شَيْئاً وَهُوَ خَيْرٌ لَكُمْ وَعَسَى أَنْ تُحِبُّوا شَيْئاً وَهُوَ شَرٌّ لَكُمْ وَاللهُ يَعْلَمُ وَأَنْتُمْ لَا تَعْلَمُونَ﴾

"Şerkirin (di rêya Xwedê de) li ser we hatiye nivîsandin û ew bi xwe ji bo we nexweş e û li ser we giran e. Dibe hûn tiştekî nevên, lê ew ji bo we başî be û dibe hûn hez ji tiştekî bikin û ew ji bo we xerabî be. Xwedê dizane (ka başiya we di çi de ye) û hûn nizanin."[2]

﴿انْفِرُوا خِفَافاً وَثِقَالاً وَجَاهِدُوا بِأَمْوَالِكُمْ وَأَنْفُسِكُمْ فِي سَبِيلِ اللَّهِ﴾

1 Tewbe, 9/36.
2 Beqere, 2/216.

"Hûn (gelî bawermendan), bi barsivikî û bi bargiranî derkevin û bi mal û canê xwe di rêya Xwedê de cîhadê bikin."[1]

﴿إِنَّ اللَّهَ اشْتَرَى مِنَ الْمُؤْمِنِينَ أَنْفُسَهُمْ وَأَمْوَالَهُمْ بِأَنَّ لَهُمُ الْجَنَّةَ يُقَاتِلُونَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ فَيَقْتُلُونَ وَيُقْتَلُونَ وَعْداً عَلَيْهِ حَقًّا فِي التَّوْرَاةِ وَالإِنْجِيلِ وَالقُرآنِ وَمَنْ أَوْفَى بِعَهْدِهِ مِنَ اللَّهِ فاسْتَبْشِرُوا بِبَيْعِكُمُ الَّذِى بَايَعْتُمْ بِهِ وَذلِكَ هُوَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُ﴾

"Bi rastî Xweda, can û malê bawermendan ji wan kirriye beramberî cennetê bide wan. Eva, lewra ew di rêya Xwedê de cîhadê dikin. Vêca ew (gawiran) dikujin û têne kuştin jî. Eva peymaneke li ser Xwedê, di Tewrat, Încîl û Qur'anê de ku bîne cih. Kî heye wekî Xwedê peymana xwe bi cih bîne? Vêca hûn bi wê kirina xwe ya ku hûn pê hatine firotin (ku cennet e) şad û kêfxweş bibin. Rizgariya mezin aha eva ye."[2]

﴿لَا يَسْتَوِى الْقَاعِدُونَ مِنَ الْمُؤْمِنِينَ غَيْرُ أُولِى الضَّرَرِ وَالْمُجَاهِدُونَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ بِأَمْوَالِهِمْ وَأَنْفُسِهِمْ فَضَّلَ الله الْمُجَاهِدِينَ بِأَمْوَالِهِمْ وَأَنفُسِهِمْ عَلَى القَاعِدِينَ دَرَجَةً وَكُلًّا وَعَدَ اللَّهُ الحُسْنَى وَفَضَّلَ الله الْمُجَاهِدِينَ عَلَى الْقَاعِدِينَ أَجْراً عَظِيماً ۞ دَرَجَاتٍ مِنْهُ وَمَغْفِرَةً وَرَحْمَةً وَكَانَ اللهُ غَفُوراً رَحِيماً﴾

"Misilmanê rûniştî (ji cîhadê), ne ewê ziyan pê ketine, ne wekî wan in ku bi xwe û bi malê xwe di rêya Xwedê de cîhadê dikin. Jixwe Xwedê ewê bi xwe û bi malê xwe di rêya Xwedê de cîhadê dikin dereceкê bi ser ewê rûniştî (û 'uzra xwe heye) xistine. Xwedê ev çakiya bi hemûyan dayî ye. Xwedê mucahid (cîhadker) bi xelatekî mezin bi ser yê rûniştî xistiye. Derece, guneh jêbirin û dilovanî li dev Xwedê ne. Xwedê, guneh jêbir e dilovan e."[3]

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا هَلْ أَدُلُّكُمْ عَلَى تِجَارَةٍ تُنجِيكُمْ مِنْ عَذَابٍ أَلِيمٍ ۞ تُؤْمِنُونَ بِاللَّهِ وَرَسُولِهِ وَتُجَاهِدُونَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ بِأَمْوَالِكُمْ وَأَنْفُسِكُمْ ذَلِكُم خَيْرٌ لَكُمْ إِنْ كُنْتُمْ تَعْلَمُونَ ۞ يَغفِرُ لَكُمْ ذُنُوبَكُمْ وَيُدْخِلْكُمْ جَنَّاتٍ تَجْرِى مِنْ تَحْتِهَا الأَنْهَارُ وَمَسَاكِنَ طَيِّبَةً فِي جَنَّاتِ عَدْنٍ ذَلِكَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُ ۞ وَأخرَى تحبُونَهَا نصْرٌ مِنَ اللَّهِ

1 Tewbe, 9/41.
2 Tewbe, 9/111.
3 Nîsa, 4/95-96.

وَفَتْحٌ قَرِيبٌ وَبَشِّرِ الْمُؤْمِنِينَ﴾

"Gelî ewên bawerî anîne! Gelo ez bazirganiyekê nîşanî we bidim ku we ji ezayeke dijwar û bi jan rizgar bike? Baweriyê bi Xwedê û bi pêxemberê wî bînin û cîhadê bi nefsa xwe û bi malê xwe di rêya Xwedê de bikin. Eva (bawerî anîn û cîhada di rêya Xwedê de) ji bo we (ji we û malê we) çêtir e, eger hûn bizanibin. Xwedê wê gunehê we jî bibe û yê we bibe cenneta ku robar di bin re diçin û yê we di cennetul-ednê de bike avahiyên xweş. Eva ye rizgariya mezin. Nîmeteke dîtir (yan rizgariyeke dîtir) hûn hez jê dikin (Xwedê dê bide we), ew serketin û fetheke nêzîk e ji Xwedê. (Meqsed pê fetha Mekkê ye). Mizgîniyê bide bawermendan."[1]

وَالآيَاتُ فِي الْبَابِ كَثِيرَة مَشْهُورَة، وَأَمَّا الأَحَادِيثُ فِي فَضْلِ الْجِهَادِ فَأَكْثَرُ مِنْ أَنْ تُحْصَر.

Ayetên Qur'anê derbarê cîhadê de pir in û meşhûr in. Heçîka hedîsê derbarê fezîleta cîhadê de jî ji ber pirbûna wan nayêne hejmartin.

١٢٨٥ - عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: سُئِلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: أَيُّ الأَعْمَالِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: (إِيمَانٌ بِاللَّهِ وَرَسُولِهِ) قِيلَ: ثُمَّ مَاذَا؟ قَالَ: (الْجِهَادُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ قِيلَ: ثُمَّ مَاذَا؟ قَالَ: (حَجٌّ مَبْرُورٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1285- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Ji Pêxemberê Xwedê (s.) hate pirs kirin ku: Kîjan kar û kiryar çêtir e? Ewî (s.) got: "Baweriya bi Xwedê û bi Pêxemberê wî ye." Hate gotin: Paşê kîjan e? Ewî (s.) got: "Cîhada di rêya Xwedê de ye." Dîsa hate gotin: Paşê kîjan e? Ewî (s.) got: "Heca meqbûl e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٨٦ - وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، أَيُّ الْعَمَلِ أَحَبُّ إِلَى اللَّهِ تَعَالَى؟ قَالَ: (الصَّلَاةُ عَلَى وَقْتِهَا) قُلْتُ: ثُمَّ أَيٌّ؟ قَالَ: (بِرُّ الْوَالِدَيْنِ) قُلْتُ: ثُمَّ أَيّ؟ قَالَ: (الْجِهَادُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1286- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Kîjan kar/'emel pirtir ji aliyê Xwedê ve tê hezkirin? Ewî (s.) got: "Nimêja di wextê wê de." Min got: Paşê kîjan e? Got: "Qenciya li dê û bavê ye." Min got: Paşê kîjan e? Got: "Cîhada di rêya Xwedê de ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

---

1 Sef, 61/10-13.

١٢٨٧- وَعَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ قَالَ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَيّ الْعَمَلِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: (الإِيمَانُ بِاللَّهِ، وَالْجِهَادُ فِي سَبِيلِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٍ.

1287- Ji Ebû Zerr (r.), got: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Kîjan kar û kiryar çêtir e? Ewî (s.) got: "Baweriya bi Xwedê û cîhada di rêya Xwedê de." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٨٨- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَغَدْوَةٌ فِي سَبِيلِ اللَّهِ، أَوْ رَوْحَةٌ، خَيْرٌ مِنَ الدُّنْيَا وَمَا فِيها). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٍ.

1288- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Sibeheka yan jî êvareka di rêya Xwedê de bê derbaskirin ji dunyayê û ji temamê tiştên di dunyayê de xêrtir e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٨٩- وَعَنْ أَبِي سَعِيدِ الخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: أَتَى رَجُلٌ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: أَيُّ النَّاسِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: (مُؤْمِنٌ يُجَاهِدُ بِنَفْسِهِ وَمَالِهِ فِي سَبِيلِ اللَّهِ) قَالَ: ثُمَّ مَنْ؟ قَالَ: (مُؤْمِنٌ فِي شِعْبٍ مِنْ الشِّعَابِ يَعْبُدُ الله وَيَدَعُ النَّاسَ مِنْ شَرِّهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٍ.

1289- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Mirovek hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û got: Kîjan qismê însanan xêrtir e? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ew mu'min e yê ku bi can û malê xwe di rêya Xwedê de cîhadê dike." Ewî mirovî got: Paşê kî ye? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Mu'minê ku vekişiyaye newalekê û di wir de îbadetê Xwedê dike û yek jî ew mu'minê ku însanan ji xerabiya xwe dûr dike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٩٠- وَعَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْد ﷺ أَنَّ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (رِبَاطُ يَوْمٍ فِي سَبيلِ اللَّهِ خَيْرٌ مِنَ الدُّنْيَا وَمَا عَلَيْهَا، وَمَوْضِعُ سَوْطِ أَحَدِكُمْ مِنَ الْجَنَّةِ خَيْرٌ من الدُّنْيَا وَمَا عَلَيْهَا، والرَّوْحَةُ يَرُوحُهَا الْعَبْدُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ تَعَالَى، أَوِ الْغَدْوَةُ، خَيْرٌ مِنَ الدُّنْيَا وَمَا عَلَيْهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٍ.

1290- Ji Sehlê kurê Se'd (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Nobeta rojekê di rêya Xwedê de, ji dunyayê û ji temamê tiştên di dunyayê de xêrtir e. Di cennetê de bi qasî cihê qemçûyê yekî ji we, ji dunyayê û ji temamê tiştên dunyayê de xêrtir e. Êvara ku yan jî sibeha ku 'ebd di rêya Xwedê de derbas bike, ji dunyayê û ji temamê tiştên li ser

  

dunyayê xêrtir e.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٩١- وَعَنْ سَلْمَانَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (رِبَاطُ يَوْمٍ وَلَيْلَةٍ خَيْرٌ مِنْ صِيَامِ شَهْرٍ وَقِيَامِهِ، وَإِنْ مَاتَ فِيهِ جَرَى عَلَيْهِ عَمَلُهُ الَّذِي كَانَ يَعْمَلُ، وَأُجْرِيَ عَلَيْهِ رِزْقُهُ، وَأَمِنَ الفَتَّانَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1291- Ji Selman (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Nobeta roj û şevekê di rêya Xwedê de, ji rojîgirtin û şevnimêja mehekê xêrtir e. Ew mirov eger di wextê nobetê de bimre wê xêra ‘emelê wî yê nobetê bê nivîsandin û rizqê wî jî wê were dayin û wê ji qeda û îmtihana gorê jî xelas bibe.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٢٩٢- وَعَنْ فَضَالَةَ بْنِ عُبَيْدٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (كُلُّ مَيِّتٍ يُخْتَمُ عَلَى عَمَلِهِ إِلَّا المُرَابِطَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ، فَإِنَّهُ يَنْمِي لَهُ عَمَلُهُ إِلَى يَوْمِ الْقِيَامَةِ، وَيُؤَمَّنُ فِتْنَةَ الْقَبْرِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1292- Ji Fedaleyê kurê ‘Ubeyd (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Temamê miriyan deftera ‘emelê wan tê girtin. Lê ew mirovê ku di rêya Xwedê de nobetê digre ew xaric. Lewra ‘emelê wî heta roja qiyametê tê nivîsandin (deftera ‘emelê wî nayê girtin) û ew mirov ji fitne û qedayê gorê jî xelas dibe.” *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiyei hedîs hesen û sehîh e.*

١٢٩٣- وَعَنْ عُثْمَانَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (رِبَاطُ يَوْمٍ فِي سَبِيلِ اللَّهِ خَيْرٌ مِنْ أَلْفِ يَوْمٍ فِيمَا سِوَاهُ مِنَ الْمَنَازِلِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1293- Ji Osman (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Nobeta rojekê di rêya Xwedê de ji hezar rojên di cihên din de ji xeynê nobetê xêrtir e.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١٢٩٤- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (تَضَمَّنَ اللَّهُ لِمَنْ خَرَجَ فِي سَبِيلِهِ، لَا يُخْرِجُهُ إِلَّا جِهَادٌ فِي سَبِيلِي، وَإِيمَانٌ بِي، وَتَصْدِيقٌ بِرُسُلِي، فَهُوَ ضَامِنٌ عَلَيَّ

أَنْ أُدْخِلَهُ الْجَنَّةَ، أَوْ ارْجِعَهُ إِلَى مَنْزِلِهِ الَّذِي خَرَجَ مِنْهُ بِمَا نَالَ مِنْ أَجْرٍ، أَوْ غَنِيمَةٍ، وَالَّذِي نَفْسُ مُحَمَّدٍ بِيَدِهِ مَا مِنْ كَلْمٍ يُكْلَمُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ إِلَّا جَاءَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ كَهَيْئَتِهِ يَوْمَ كُلِمَ، لَوْنُهُ لَوْنُ دَمٍ، وَرِيحُهُ رِيحُ مِسْكٍ، وَالَّذِي نَفْسُ مُحَمَّدٍ بِيَدِهِ، لَوْلَا أَنْ أَشُقَّ عَلَى الْمُسْلِمِينَ مَا قَعَدْتُ خِلَافَ سَرِيَّةٍ تَغْزُو فِي سَبِيلِ اللَّهِ أَبَداً، ولَكِنْ لَا أَجِدُ سَعَةً فَأَحْمِلَهُمْ، وَلَا يَجِدُونَ سَعَةً، وَيَشُقُّ عَلَيْهِمْ أَنْ يَتَخَلَّفُوا عَنِّي، وَالَّذِي نَفْسُ مُحَمَّدٍ بِيَدِهِ، لَوَدِدْتُ أَنِّي أَغْزُو فِي سَبِيلِ اللَّهِ، فَأُقْتَلَ، ثُمَّ أَغْزُوَ، فَأُقْتَلَ، ثُمَّ أَغْزُوَ، فَأُقْتَلَ). رَوَاهُ مُسْلِم، وَرَوَى الْبُخَارِي بَعْضَهُ.

1294- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Xwedê te‘ala kefîl û damin e ji bo wî kesê ku di rêya wî (c.c.) de (ji mala xwe) derketiye. Ku bes cîhada di rêya min, baweriya bi min û tesdîqa bi pêxemberên min ew kes ji mala wî derxistiye. Xwedê te‘ala ewleyî daye ku: Ew, wê ewî kesî bibe cennetê yan jî wê ewî bi xêr û xenîmeta ku bi dest xistiye ve vegerîne mala wî ya ku jê derketiye. Ez sond dixwim bi wî Xwedayê ku nefsa Muhemmed di destê wî de ye, tu birînek tune ku di rêya Xwedê de hatibe birînkirin miheqeq roja qiyametê wê ser şeklê xwe yê roja ku hatiye birînkirin were; rengê wê rengê xûnê ye, bêhna wê bêhna miskê ye. Ez sond dixwim bi wî Xwedayê ku nefsa Muhemmed di destê wî de ye, eger ez li ser misilmana netirsiyama, ez ji tu cerda di rêya Xwedê de derketiye şûnde nedimam tu car paşve nedimam. Lê ez firehtayê nabînim ku ez ewan bidim pêk anîn, ew jî firehiyê nabînin û li wan zor tê ku ji min paşve dimînin. Ez sond dixwim bi wî Xwedayê ku nefsa Muhemmed di destê wî de ye, ez hez dikim ku ez di rêya Xwedê de herb bikim û bême kuştin, paşê dîsa herb bikim û bême kuştin û paşê dîsa herb bikim û bême kuştin.” *Muslim rîwayet kiriye û Buxarî jî hinekê wê rîwayet kiriye.*

١٢٩٥- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا مِنْ مَكلوم يُكْلَمُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ إِلَّا جَاءَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، وَكَلْمُهُ يَدْمَى: اللَّوْنُ لَوْنُ دَمٍ، وَالرِّيحُ رِيحُ مِسْكٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1295- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Çi birîndarê ku di rêya Xwedê de hatibe birîndarkirin miheqeq roja qiyametê dê di wî halî de were ku ji birîna wî jî xûn dirije; rengê wê rengê xûnê ye û bêhna wê jî bêhna miskê ye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٢٩٦- وَعَنْ مُعَاذٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَنْ قَاتَلَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ مِنْ رَجُلٍ مُسلِمٍ فُوَاقَ نَاقَة وَجَبَتْ لَهُ الْجَنَّةُ، وَمَنْ جُرِحَ جُرْحاً فِي سَبِيلِ اللَّهِ أَوْ نكِبَ نَكْبَةً، فَإِنَّهَا تَجِيءُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ كَأَغزَرِ مَا كَانَتْ: لَوْنُهَا الزَّعْفَرَانِ، وَرِيحُهَا كَالْمِسكِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1296- Ji Mu'az (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: Kîjan mêrê misilman bi qasî dotina deveheke di rêya Xwedê de cîhadê bike cennet ji wî re wacib dibe. Kî jî di rêya Xwedê de bê birîndar kirin û yan jî qeda û musîbetek bê serê wî, ew mirov roja qiyametê tê ku xûna wê birînê ji berê pirtir dibe; rengê wê zaferan e û bêhna wê jî mîna miskê ye." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye, hedîs hesen e.*

١٢٩٧- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: مَرَّ رَجُلٌ مِنْ أَصْحَابِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ بِشِعْبٍ فِيهِ عُيَيْنَةٌ مِن مَاءٍ عَذبَة، فَأَعْجَبَتْهُ، فَقَالَ: لَوْ اعتَزَلْتُ النَّاسَ، فَأَقَمْتُ فِي هَذَا الشِّعبِ، وَلَنْ أَفعَلَ حَتَّى أَسْتأذِنَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَذَكَرَ ذَلِكَ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: (لَا تَفْعَلْ، فَإِنَّ مُقَامَ أَحَدِكُمْ فِي سَبِيلِ اللَّهِ أَفْضَلُ مِنْ صَلَاتِهِ فِي بَيْتِهِ سَبْعِينَ عَاماً، أَلَا تُحِبُّونَ أَنْ يَغْفِرَ الله لَكُمْ وَيُدْخِلَكُمُ الْجَنَّةَ؟ اغزُوا فِي سَبِيلِ اللَّهِ، مَنْ قَاتَلَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ فُوَاقَ نَاقَةٍ وَجَبَتْ لَهُ الْجَنَّةُ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1297- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Mirovek ji eshabê Pêxemberê Xwedê (s.) di newalekê de, ku tê de ava şêrîn heyî, derbas bû. Eva pir xweşa wî mirovî çû û vêca ewî ji xwe re got: Xwezî ez ji însanan dûr biketima û ez di vê newalê de rûniştama. Lê heta ku ez ji Pêxemberê Xwedê (s.) destûrê nestînim ez vê nakim. Vêca ewî mirovî ev yeka hanê ji Pêxemberê Xwedê (s.) re zikir kir. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Tu ewê kirinê neke. Lewra bêguman rawestana yekî ji we di rêya Xwedê de ji nimêjkirina wî heftê salî di mala xwe de xêrtir e. Qey hûn naxwazin ku Xwedê we bibexşîne û we bibe cennetê? Vêca hûn di rêya Xwedê de cîhadê bikin. Kî bi qasî dotina deveheke di rêya Xwedê de cîhadê bike cennet ji wî re wacib dibe." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٢٩٨- وَعَنْهُ قَالَ: قِيلَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ: مَا يَعْدِلُ الْجِهَادَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ؟ قَالَ: (لَا

تَسْتَطِيعُونَهُ) فَأَعَادُوا عَلَيْهِ مَرَّتَيْنِ أَوْ ثَلَاثاً، كُلُّ ذَلِكَ يَقُولُ: (لَا تَسْتَطِيعُونَه) ثُمَّ قَالَ: (مَثَلُ الْمُجَاهِدِ فِي سَبِيلِ اللَّهِ كَمَثَلِ الصَّائِمِ الْقَائِمِ الْقَانِتِ بِآيَاتِ اللَّهِ لَا يَفْتُرُ مِنْ صِيَامٍ، وَلَا صَلَاةٍ، حَتَّى يَرْجِعَ الْمُجَاهِدُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

وَفِي رِوَايَةِ الْبُخَارِيِّ: أَنَّ رَجُلاً قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ دُلَّنِي عَلَى عَمَلٍ يَعْدِلُ الْجِهَادَ؟ قَالَ: (لَا أَجِدُهُ) ثُمَّ قَالَ: (هَلْ تَسْتَطِيعُ إِذَا خَرَجَ الْمُجَاهِدُ أَنْ تَدخُلَ مَسْجِدَكَ فَتَقُومَ وَلَا تَفتُرَ، وتَصُومَ ولا تُفْطِرَ؟) فَقَالَ: وَمَنْ يَسْتَطِيعُ ذَلِكَ؟

1298- Dîsa ji wî (r.), got: Hate gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Çi îbadet himkufê/hemtayê cîhada di rêya Xwedê de ye? Ewî (s.) got: “Hûn nikarin îbadeteke himkufê cîhadê bikin.” Sehabiyan ev pirsa xwe du û yan jî sê caran tekrar kirin û her carê Pêxemberê Xwedê (s.) digot: “Hûn nikarin îbadeteke himkufê cîhadê bikin.” Û paşê jî wiha got: “Mesela kesê ku di rêya Xwedê de cîhadê dike wekî mesela ewî mirovî ye ku bi roj rojiye û bi şev jî wextê xwe bi îbadet û xwendina Qur‘anê derbas dike. Û rojî û nimêja ewî mirovî bênavber berdewam dike heta ew mucahid ji cîhadê vegere bê mala xwe.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di seneda Buxarî de: Bêguman mirovekî got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu min agahdarê ‘emelekî himkufê cîhadê be bike? Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: “Ez ‘emelekî wisa nabînim.” Û paşê wiha got: “Tu dikarî; wextê mucahid derkevê cîhadê heta ku vegere, tu daxilî mêzgeftê bibî û bêwestandin îbadet bikî û bê fitar rojî bigrî?” Ewî mirovî got: Kî dikare wisa bike!

١٢٩٩ - وَعَنْهُ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مِنْ خَيْرِ مَعَاشِ النَّاسِ لَهُمْ رَجُلٌ مُمْسِكٌ بِعِنَانِ فَرَسِهِ فِي سَبِيلِ اللَّهِ، يَطِيرُ عَلَى مَتْنِهِ كُلَّمَا سَمِعَ هَيعةً، أَوْ فَزْعَةً طَارَ عَلَيْهِ، يَبْتَغِي الْقَتْلَ وَالْمَوْتَ مَظَانَّهُ، أَوْ رَجُلٌ فِي غُنَيْمَةٍ أَوْ شَعَفَةٍ مِنْ هَذِهِ الشَّعَفِ أَوْ بَطْنِ وَادٍ مِنْ هَذِهِ الأَوْدِيَةِ، يُقِيمُ الصَّلَاةَ، وَيُؤْتِي الزَّكَاةَ، وَيَعْبُدُ رَبَّهُ حَتَّى يَأْتِيَهُ الْيَقِينُ، لَيْسَ مِنَ النَّاسِ إِلَّا فِي خَيْرٍ). رَوَاهُ مُسْلِمْ.

1299- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Xêrtirînê heyata însanan ev e: Ku mirovek bi hefsarê hespê xwe di

rêya Xwedê de bigre û wextê dengê cengekê yan jî dengê tirsekê bihîst kuştin û mirina xwe bide ber çavê xwe li ser pişta wî hespî bimeşe û her wextê amade be ji bo ajotina li ser dijminî. Yan jî xêrtirînê jiyanê ev e: Ku mirovek di serê çiyakî de yan jî di binê newalek û gelîkî de di nav hinek pezê xwe de bi wan re heta mirinê mijûl bibe û nimêja xwe bike û zekata xwe bide û îbadetê Rebbê xwe bike. Her du hal jî ji xêrê xalî nînin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٠٠- وَعَنْهُ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّ فِي الْجَنَّةِ مَائَةَ دَرَجَةٍ أَعَدَّهَا الله لِلْمُجَاهِدِينَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ مَا بَيْنَ الدَّرَجَتَيْنِ كَمَا بَيْنَ السَّمَاءِ وَالأَرْضِ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1300- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman di cennetê de sed derece û mertebe hene, Xwedê te'ala ew derece ji bo mucahidan (kesê ku di rêya Xwedê de cîhad dikin) amade kiriye. Dûrahiya navbera du derecan wekî dûrahiya navbera erd û asîmana ye." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٣٠١- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: مَنْ رَضِيَ بِاللَّهِ رَبّاً، وَبِالإِسْلَامِ دِيناً، وَبِمُحَمَّدٍ رَسُولاً، وَجَبَتْ لَهُ الْجَنَّةُ). فَعَجِبَ لَهَا أَبُو سَعِيدٍ، فَقَالَ: أَعِدْهَا عَلَيَّ يَا رَسُولَ اللَّهِ، فَأَعَادَهَا عَلَيْهِ، ثُمَّ قَالَ: (وَأُخْرَى يَرْفَعُ اللَّهُ بِهَا العَبْدَ مِئَةَ دَرَجَةٍ فِي الْجَنَّةِ، ما بَيْنَ كُلِّ دَرَجَتَيْنِ كَمَا بَيْنَ السَّماءِ وَالأَرْضِ) قَالَ: وَمَا هِيَ يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: (الْجِهَادُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ، الْجِهَادُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1301- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî Xwedê te'ala Rebb, Îslamê dîn û Muhemmed (s.) jî qasid û pêxember qebûl bike û wisa razî bibe cennet jê re wacib dibe." Ev gotin xweşa Ebû Se'îd çû û vêca got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu evê gotinê ji min re tekrar bike. Pêxemberê Xwedê (s.) jî ew gotin tekrar kir û paşê got: "'Emelekî din jî heye Xwedê te'ala bi wî 'emelî 'ebdê xwe di cennetê de bi sed derece û merteban bilind dike. Û dûrahiya navbera du derecan jî wekî dûrahiya navbera erd û asîmana ye." Ebû Se'îd (r.) got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ew çi ye? Ewî (s.) got: "Cîhada di rêya Xwedê de ye, cîhada di rêya Xwedê de ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٠٢- وَعَنْ أَبِي بَكْرِ بْنِ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ، قَالَ: سَمِعْتُ أَبِي ﷺ وَهُوَ بِحَضْرَةِ الْعَدُوِّ، يَقُولُ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَ أَبْوَابَ الْجَنَّةِ تَحْتَ ظِلَالِ السُّيُوفِ) فَقَامَ رَجُلٌ رَثُّ الْهَيْئَةِ فَقَالَ: يَا أَبَا مُوسَى أَأَنْتَ سَمِعْتَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ هَذَا؟ قَالَ: نَعَمْ، قَالَ: فَرَجَعَ إِلَى أَصْحَابِهِ، فَقَالَ: أَقْرَأُ عَلَيْكُمُ السَّلَامَ ثُمَّ كَسَرَ جَفْنَ سَيْفِهِ فَأَلْقَاهُ، ثُمَّ مَشَى بِسَيْفِهِ إِلَى العَدُوِّ فَضَرَبَ بِهِ حَتَّى قُتِلَ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1302- Ji Ebû Bekirê kurê Ebû Mûsayê Eş'arî, got: Min ji bavê xwe bihîst ku ewî pêşberî dijmin wiha digot: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman dergehê cennetê di bin siya şûran de ne." Li ser vê gotinê mirovekî şepirze rabû jipiyan û got: Ya Ebû Mûsa! Te bi xwe ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst ku ev gotin got? Ebû Mûsa got: Belê. Vêca ew mirov vegeriya bal hevalê xwe û got: Ez ji we re xweşiyê dixwazim. Û paşê kalanê şûrê xwe şiktand û avêt, paşê bi şûrê xwe meşya bal dijmin ve û bi şûrê xwe li dijmin xist heta ku hate kuştin. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٠٣- وَعَنْ أَبِي عَبْسٍ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ جُبَيْرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا اغْبَرَّتْ قَدَمَا عَبْدٍ فِي سَبِيلِ اللَّهِ فَتَمَسَّهُ النَّارُ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1303- Ji Ebû 'Ebs 'Ebdurrehmanê kurê Cubeyr (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê di rêya Xwedê de toz pekya be piyên wî, agir ewî naşewitîne." *Buxarî riwayet kiriye.*

١٣٠٤- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا يَلِجُ النَّارَ رَجُلٌ بَكَى مِنْ خَشْيَةِ اللَّهِ حَتَّى يَعُودَ اللَّبن فِي الضَّرْعِ، وَلَا يَجْتَمِعُ عَلَى عَبْدٍ غُبَارٌ فِي سَبِيلِ اللَّهِ وَدُخَانَ جَهَنَّمَ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1304- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ew mirovê ku ji tirsa Xwedê giryaye, heta ku şîrê hatiye dotin venegere guhan, ew jî nakeve êgir. Û li ser 'ebdekî jî toza di rêya Xwedê de û dûyê cehennemê bi hevdu re kom nabin." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

١٣٠٥- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (عَيْنَانِ لَا تَمَسُّهُمَا النَّارُ: عَيْنٌ بَكَتْ مِنْ خَشْيَةِ اللَّهِ، وَعَيْنٌ بَاتَتْ تَحْرُسُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

1305- Ji kurê 'Ebbas (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Du çav hene naçine êgir: Ew çavê ku ji tirsa Xwedê giryaye û yek jî ew çavê di rêya Xwedê de bi şev nobet girtiye." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٣٠٦- وَعَنْ زَيْدِ بْنِ خَالِدٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ جَهَّزَ غَازِياً فِي سَبِيلِ اللَّهِ فَقَدْ غَزَا، وَمَنْ خَلَفَ غَازِياً فِي أَهْلِهِ بِخَيْرٍ فَقَدْ غَزَا). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1306- Ji Zeydê kurê Xalid (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî di rêya Xwedê de cengawerekî techîz bike herwekî ew bi xwe cengê dike û kî genciyê li malbata cengawer bike herwekî ew bi xwe cengê dike." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٣٠٧- وَعَنْ أَبِي أُمَامَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَفْضَلُ الصَّدَقَاتِ ظِلُّ فُسْطَاطٍ فِي سَبِيلِ اللَّهِ، وَمَنِيحَةُ خَادِمٍ فِي سَبِيلِ اللَّهِ، أَوْ طَرُوقَةُ فَحْلٍ فِي سَبِيلِ اللَّهِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيح.

1307- Ji Ebû Umame (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xêrtirînê sedeqan, siya wî konî ye ku di rêya Xwedê de hatiye vegirtin, û bexişandina xulamekî ye di rêya Xwedê de û yek jî hêştira berdar e ku di rêya Xwedê de hatiye dayin." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen û sehih e.*

١٣٠٨- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ فَتىً مِنْ أَسْلَمَ قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، إِنِّي أُرِيدُ الغَزْوَ وَلَيْسَ مَعِي مَا أَتَجَهَّزُ بِهِ؟ قَالَ: (ائْتِ فُلَاناً، فَإِنَّهُ قَدْ كَانَ تَجَهَّزَ فَمَرِضَ) فَأَتَاهُ فَقَالَ: إِنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يُقْرِئُكَ السَّلَامَ وَيَقُولُ: أَعْطِنِي الَّذِي تَجَهَّزْتَ بِهِ، قَالَ: يَا فُلَانَةُ، أَعْطِيهِ الَّذِي كُنْتُ تَجَهَّزْتُ بِهِ، وَلَا تَحْبِسِي عَنْهُ شَيْئاً، فَوَاللَّهِ، لَا تَحْبِسِي مِنْهُ شَيْئاً فَيُبَارَكَ لَكِ فِيهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1308- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku xortekî ji êla Eslemiyan got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ez daxwaza çûyina herbê dikim lê çek û silehê min tune? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu here cem filankesê, ewî xwe ji cîhadê re pêk anîbû lê nexweş ket (bila ew çek û sîlehê xwe bide te)." Ew

jî çû bal wî û jê re got: Silavê Pêxemberê Xwedê (s.) ji te re heye û dibêje: Tu wan çek û sîlehê xwe bide min. Vêca ewî ji xanima xwe re got: Hey filankesê, tu wan çek û sîlehê min bide evî mirovî û tiştekî jê nehêlî da ku tu xwedanadan bibî." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٠٩- وَعَنْ أَبِي سَعِيدِ الْخُدْرِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ بَعَثَ إِلَى بَنِي لَحْيَانَ، فَقَالَ: (لِيَنْبَعِثْ مِنْ كُلِّ رَجُلَيْنِ أَحَدُهُمَا وَالأَجْرُ بَيْنَهُمَا). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: (لِيَخْرُجْ مِنْ كُلِّ رَجُلَيْنِ رَجُلٌ) ثُمَّ قَالَ لِلْقَاعِدِ: (أَيُّكُمْ خَلَفَ الْخَارِجَ فِي أَهْلِهِ وَمَالِهِ بِخَيْرٍ كَانَ لَهُ مِثْلُ نِصْفِ أَجْرِ الْخَارِجِ).

1309- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) şande bal êla Benî Lihyan û got: Bila ji her du mirovan yek ji bo cîhadê bê şandin û xêr jî di navbera her dukan de ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

Di senedekê de: "Ji her du mirovan mirovek bila ji bo cîhadê derkeve." Paşê Pêxemberê Xwedê (s.) ji yê ku naçe herbê re jî got: "Kî ji we qenciyê li malbat û mulkê mucahid bike ji wî re jî wekî nîvê xêra mucahid heye."

١٣١٠- وَعَنِ الْبَرَاءِ ﷺ قَالَ: أَتَى النَّبِيَّ ﷺ رَجُلٌ مُقَنَّعٌ بِالْحَدِيدِ، فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أُقَاتِلُ وأُسْلِمُ؟ قَالَ: (أَسْلِمْ، ثُمَّ قَاتِلْ) فَأَسْلَمَ، ثُمَّ قَاتَلَ فَقُتِلَ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (عَمِلَ قَلِيلاً وَأُجِرَ كَثِيراً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1310- Ji Bera (r.), got: Mirovekî bi çek û sîleh hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ez şer bikim, yan bibime misilman? Pêxemberê Xwedê (s.) got: Tu misilman be paşê jî şer bike." Ew jî misilman bû, paşê çû herbê û hate kuştin. Li ser vê bûyerê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Evî mirovî hindik kar û kiryar kir lê pir xwedanxêr bû." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣١١- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (مَا أَحَدٌ يَدْخُلُ الجَنَّةَ يُحِبُّ أَنْ يَرْجِعَ إِلَى الدُّنْيَا وَلَهُ مَا عَلَى الأَرْضِ مِنْ شَيْءٍ إِلَّا الشَّهِيدُ، يَتَمَنَّى أَنْ يَرْجِعَ إِلَى الدُّنْيَا، فَيُقْتَلَ عَشْرَ مَرَّاتٍ، لِمَا يَرَى مِنَ الْكَرَامَةِ). وَفِي رِوَايَةٍ: (لِمَا يَرَى مِنْ فَضْلِ الشَّهَادَةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1311- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Kesê here cennetê, dunyayê hemû bidinê jî, êdî naxwaze ku vegere dunyayê. Lê şehîd xaric. Ew, ji ber qencî û kerema ku dîtiye, dixwaze ku dîsa vegere dunyayê û deh caran bê kuştin."

Di senedekê de: "Ji ber fedl û xawêna ku ji şehadetê dîtiye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣١٢- وَعَنْ عَبدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (يَغْفِرُ الله لِلشَّهِيدِ كُلَّ ذَنْبٍ إِلَّا الدَّيْنَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: (الْقَتْلُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ يُكَفِّرُ كُلَّ شَيْءٍ إِلَّا الدَّيْنَ).

1312- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedê te'ala, ji xeynê deyn, temamê gunehê şehîd dibexşîne." *Muslim rîwayet kiriye.*

Di senedeke Muslim de: "Şerê di rêya Xwedê de, ji xeynê deyn, dibe kefaretê temamê gunehan."

١٣١٣- وَعَنْ أَبِي قَتَادَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَامَ فِيهِمْ، فَذَكَرَ أَنَّ الْجِهَادَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ، وَالإِيمَانَ بِاللَّهِ أَفْضَلُ الأَعْمَالِ، فَقَامَ رَجُلٌ، فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَرَأَيْتَ إِنْ قُتِلْتُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ أَيُكَفَّرُ عَنِّي خَطَايَايَ؟ فَقَالَ لَهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: نَعَمْ، إِنْ قُتِلْتَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ، وَأَنْتَ صَابِرٌ مُحْتَسِبٌ مُقْبِلٌ غَيْرُ مُدْبِرٍ) ثُمَّ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (كَيْفَ قُلْتَ؟) قَالَ: أَرَأَيْتَ إِنْ قُتِلْتُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ أَيُكَفَّرُ عَنِّي خَطَايَايَ؟ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (نَعَمْ وَأَنْتَ صَابِرٌ مُحْتَسِبٌ، مُقْبِلٌ غَيْرُ مُدْبِرٍ، إِلَّا الدَّيْنَ، فَإِنَّ جِبْرِيلَ ﷺ قَالَ لِي ذَلِكَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1313- Ji Ebû Qetade (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) di nav sehabiyan de rabû ser piya û axaft: "Bêguman cîhada di rêya Xwedê de û baweriya bi Xwedê çêtirtirê 'emelan e." Vêca mirovek rabû û got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ka tu çi dibêjî, eger ez di rêya Xwedê de bêm kuştin, gelo ew kuştina min wê bibe kefaretê gunehê min? Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Belê, eger tu di rêya Xwedê de bêyî kuştin; lê bitebat bî, hêvîdarê xêra wê bî, berê xwe bidî dijmin û ji dijmin nerevî." Paşê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Te çi got?" Ewî mirovî got: Ka tu çi dibêjî, eger ez di rêya

Xwedê de bêm kuştin, gelo ew kuştina min wê bibe kefaretê gunehê min? Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Belê, eger tu di rêya Xwedê de bêyî kuştin; lê bitebat bî, hêvîdarê xêra wê bî, berê xwe bidî dijmin û ji dijmin nerevî. Lê deyn xaric. Cibrîl (s.) ev ji min re got.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣١٤- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَجُلٌ: أَيْنَ أَنَا يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنْ قُتِلتُ؟ قَالَ: (فِي الْجَنَّةِ) فَأَلْقَى تَمَرَاتٍ كُنَّ فِي يَدِهِ، ثُمَّ قَاتَلَ حَتَّى قُتِلَ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1314- Ji Cabir (r.), got: Mirovekî got: Ya Pêxemberê Xwedê! Cihê min kuder e eger ez bêm kuştin? Ewî (s.) got: “Cennet e.” Li ser vê gotinê ewî mirovî xurmên di destên xwe de avêtin û çû şer kir heta hate kuştin. *Muslim riwayet kiriye.*

١٣١٥- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: اِنْطَلَقَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَأَصْحَابُهُ، حَتَّى سَبَقُوا الْمُشْرِكِينَ إِلَى بَدْرٍ، وَجَاءَ الْمُشْرِكُونَ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا يقدمَنَّ أَحَدٌ مِنْكُمْ إِلَى شَيْءٍ حَتَّى أَكُونَ أَنَا دُونَهُ) فَدَنَا الْمُشْرِكُونَ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (قُومُوا إِلَى جَنَّةٍ عَرْضُهَا السَّمَوَاتُ وَالأَرْضُ) قَالَ: يَقُولُ عُمَيْرُ بْنُ الْحُمَامِ الأَنْصَارِيُّ ﷺ: يَا رَسُولَ اللَّهِ جَنَّةٌ عَرْضُهَا السَّمَاوَاتُ وَالأَرْضُ؟ قَالَ: (نَعَمْ) قَالَ: بَخٍ بَخٍ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا يَحمِلُكَ عَلَى قَولكَ بَخٍ بَخٍ؟) قَالَ: لَا وَاللَّهِ يا رَسُولَ اللَّهِ إِلَّا رَجَاءَ أَنْ أَكُونَ مِنْ أَهْلِهَا، قَالَ: (فَإِنَّكَ مِنْ أَهْلِهَا) فَأَخْرَجَ تَمَرَاتٍ مِنْ قَرَنِهِ، فَجَعَلَ يَأْكُلُ مِنْهُنَّ، ثُمَّ قَالَ لَئِنْ أَنَا حَيِيتُ حَتَّى آكُلَ تَمَرَاتِي هَذِهِ، إِنَّهَا لَحَيَاةٌ طَوِيلَةٌ، فَرَمَى بِمَا كَانَ مَعَهُ مِنَ التَّمْرِ، ثُمَّ قَاتَلَهُمْ حَتَّى قُتِلَ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1315- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) digel eshabê xwe meşiyan heta ku beriya muşrikan gihîştine Bedrê. Muşrik jî hatin. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Bila tu kes ji we bê gotina min tiştekî neke.” Muşrik hatin nêzîk û vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Hûn rabin karê cîhadê bikin ji bo ku hûn bigihêjine cenneta ku firehiya wê bi qasî erd û asîmana ye.” Rawî dibêje: ‘Umeyrê kurê Humamê Ensarî (r.) got: Ya Pêxemberê Xwedê!

Cennet, qey firehiya wê bi qasî erd û asîmana ye? Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Belê.” ‘Umeyr got: Wax wax! Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Te çima got: Wax wax?” ‘Umeyr jî got: Ya Pêxemberê Xwedê! Bes sedemê evê gotina min; hêviya min e ku ez bibim ji ehlê wê. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: “Jixwe tu ji ehlê wê yî.” Li ser vê gotinê ‘Umeyr hinek xurme ji kalanê xwe derêxistin û dest bi xwarina wan kir. Paşê jî got: Heger ez bijîm heta ku evan xurmeyan bixwim û xelas bikim, bêguman ew jiyanek dirêj e! Vêca xurmeyên pê re bûn avêtin û paşê heta ku hate kuştin bi wan re şer kir. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣١٦- وَعَنْهُ قَالَ: جَاءَ نَاسٌ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ أَنِ ابْعَثْ مَعَنَا رِجَالاً يُعَلِّمُونَا القُرآنَ وَالسُّنَّةَ، فَبَعَثَ إِلَيْهِم سَبعِينَ رَجُلاً مِنَ الأَنْصَارِ يُقَالُ لَهُمُ: القُرَّاءُ، فِيهِم خَالِي حَرَامٌ، يَقْرَؤُونَ القُرْآنَ، وَيَتَدَارَسُونَ بِاللَّيْلِ يَتَعَلَّمُونَ، وكَانُوا بِالنَّهَارِ يَجِيئُونَ بِالْمَاءِ، فَيَضَعُونَهُ فِي الْمَسْجِدِ، وَيَحْتَطِبونَ فَيَبِيعُونَه، ويَشْتَرُونَ بِهِ الطَّعَامَ لأَهْلِ الصُّفَّةِ، ولِلفُقَرَاءِ، فَبَعَثَهُم النَّبِيُّ ﷺ فَعَرَضُوا لَهُمْ فَقَتَلُوهُمْ قَبْلَ أَنْ يَبْلُغُوا الْمَكَانَ، فَقَالُوا: اللَّهُمَ بَلِّغ عَنا نَبيّنَا أَنَّا قَدْ لَقِيْنَاكَ فَرَضِينَا عَنْكَ وَرَضِيتَ عَنَّا، وَأَتَى رَجُلٌ حَرَاماً -خَالَ أَنَسٍ- مِنْ خَلْفِهِ، فَطَعَنَهُ بِرُمْحٍ حَتَّى أَنْفَذَهُ، فَقَالَ حَرَامٌ: فُزْتُ وَرَبِّ الْكَعْبَةِ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ إِخْوَانكُمْ قَدْ قُتِلُوا وَإِنَّهُمْ قَالُوا: اللَّهُمَّ بَلِّغْ عَنَّا نَبِيَّنا أَنَّا قَدْ لَقِينَاكَ فَرَضِينَا عَنْكَ وَرَضِيتَ عَنَّا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم، وَهَذَا لَفْظُ مُسْلِم.

1316- Dîsa ji wî (r.), got: Civatek însan hatin bal Pêxember (s.) û gotin: Tu hinek mirovên ku Qur‘an û hedîsan hînî me bikin bi me re bişîne. Pêxemberê Xwedê (s.) jî heftê mêr ji Ensariyan şand ku ji wan re “Qurra” dihate gotin. Di nav wan de xalê min Heram jî hebû. Ewan Qur’an dixwendin, bi şev jî ew muzakere dikirin û hîn dibûn. Bi roj jî av dihanîn û datanîn mizgeftê, êzing berhev dikirin û vêca difirotin û bi wî pereyî jî ji ehlê Suffê û feqîran re xwarin dikirrîn. Pêxember (s.) ew heftê mêr şandin, lê beriya ku ew bigihêjne cihê ku diçinê, dijmin li wan derket û ew heftê sehabe kuştin. Wextê dijmin ew dorpêç kirin, ewan gotin: Xwedayo! Tu evê agaha me bigihînî Pêxemberê me. Bêguman êdî em rastî te hatin, em bi

xwe ji te razî ne û tu jî ji me razî be. Mirovek ji gawiran hat û pişt Heramê xalê Enes ve sekinî tîrek li serê wî xist heta derbasî aliyê din bû. Di wê demê de Heram (r.) jî got: Ez bi Rebbê Ke'bê sond dixwim, ez nû rizgar bûm. Pêxemberê Xwedê (s.) jî ji sehabiyan re ev bûyer digot: "Birayên we hatin kuştin û wiha gotin: Xwedayo! Tu evê agaha me bigihînî Pêxemberê me. Bêguman êdî em rastî te hatin, em bi xwe ji te razî ne û tu jî ji me razî be." *Buxarî û Muslim riwayet kirine. Ev levzê Muslim ye.*

١٣١٧- وعَنْهُ قَالَ: غَابَ عَمِّي أَنَسُ بنُ النَّضْرِ ﷺ عَنْ قِتَالِ بَدْرٍ، فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ غِبْتُ عَنْ أَوَّلِ قِتَالٍ قَاتَلْتَ الْمُشْرِكِينَ، لَئِنِ الله أَشْهَدَنِي قِتَالَ الْمُشْرِكِينَ لَيُرِيَنَّ الله مَا أَصْنَعُ، فَلَمَّا كَانَ يَوْمُ أُحُدٍ انْكَشَفَ الْمُسْلِمُونَ، فَقَالَ: اللَّهُمَّ إِنِّي أَعْتَذِرُ إِلَيْكَ مِمَّا صَنَعَ هَؤُلَاءِ - يَعْنِي أَصْحَابَهُ- وَأَبْرَأُ إِلَيْكَ مِمَّا صَنَعَ هَؤُلَاءِ، يَعْنِي الْمُشْرِكِينَ، ثُمَّ تَقَدَّمَ فَاسْتَقْبَلَهُ سَعْدُ بنُ مُعَاذٍ فَقَالَ: يَا لِسَعدُ بْنَ مُعَاذٍ الْجَنَّةَ وَربِّ النَّضْرِ، إِنِّي أَجِدُ رِيحَهَا مِنْ دُونِ أُحُدٍ، قَالَ سَعْدٌ: فَمَا اسْتَطَعتُ يَا رَسُولَ اللَّهِ مَا صَنَعَ، قَالَ أَنَسٌ: فَوَجَدنَا بِهِ بِضْعاً وَثَمَانِينَ ضَرْبَةً بِالسَّيفِ، أَوْ طَعْنَةً بِرُمْحٍ، أَوْ رَمْيَةً بِسَهمٍ، وَوَجَدْنَاهُ قَدْ قُتِلَ، وَمَثَّلَ بِهِ الْمُشْرِكُونَ، فَمَا عرَفَهُ أَحَدٌ إِلَّا أُخْتُهُ بِبَنَانِهِ. قَالَ أَنَسٌ: كُنَّا نُرَى -أَوْ نَظُنُّ - أَنَّ هَذِه الآيَة نَزَلَتْ فِيهِ وَفِي أَشْبَاهِهِ: (مِنَ الْمُؤْمِنِينَ رِجَالٌ صَدَقُوا مَا عَاهَدُوا الله عَلَيْهِ فَمِنْهُمْ مَنْ قَضَى نَحْبَهُ.... إِلَى آخرها). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1317- Dîsa ji wî (r.), got: Apê min Enesê kurê Nedr (r.) beşdarî herba Bedrê nebûbû. Ewî got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ez beşdarî herba yekem ku te bi muşrikan re kir nebûm. Lê eger Xwedê min bigihîne herba bi muşrikan re, Xwedê wê nîşan bide ka ezê çi bikim. Wextê ku herba Uhudê destpê kir û misilman têkçûn û dest ji hev berdan Enesê kurê Nedr (r.) got: "Xwedayo! Ez ji ber kirina van –eshab– lêborîna xwe ji te dixwazim û ji ber kirina van –muşrik– jî ez berî me." Paşê da ku bi muşrikan re şer bike pêşde çû û Se'dê kurê Mu'az rastî wî hat. Enesê kurê Nedr got: Ya Se'dê kurê Mu'az! Eva cennet, bi Rebbê Nedr sond dixwim ku ez di binê Uhudê de bêhna cennetê dikim. Se'dê kurê Mu'az (r.) got: Ya Pêxemberê

Xwedê! Min kirina Enesê kurê Nedr nikarî ez bikim. Enes dibêje: Me apê min Enesê kurê Nedr dît ku heştê û çend derbên şûran yan derbê riman yan jî derbê tîran li ser cesedê wî hebûn. Me ew dît ku hatiye kuştin û muşrikan bi cesedê wî leyîstibûn. Ji xeynê xuşka wî tu kesî ew nas nekir û xuşka wî jî bi tiliyê wî ew nas kir. Enes dibêje: Me dizanî yan jî me zen dikir ku ev ayeta Qur'anê derbarê wî û kesên wekî wî de nazil bûye: Di nav xwedan-baweran de hinek zilam hene peymana xwe ya digel Xwedê bi cih anîne, vêca hinek ji wan şehîd bûn û mirin. (Ehzab: 23) Heta dûmayîka ayetê. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣١٨ – وَعَنْ سَمُرَةَ ﷺ قَالَ: قالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (رَأَيْتُ اللَّيْلَةَ رَجُلَيْنِ أَتَيَانِي، فَصعدَا بِي الشَّجَرَةَ، فَأَدْخَلاَنِي دَاراً هِي أَحْسَنُ وَأَفْضَل، لَمْ أَرَ قَطُّ أَحْسَنَ مِنْهَا، قَالَا: أَمَّا هَذِهْ الدَّار فَدَارُ الشُّهَدَاءِ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1318- Ji Semure (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Min îşev di xewna xwe de du mirov dîtin, ew hatine bal min û ez berjorê daristanekê kirim, di wê daristanê de jî ez xistme avahiyekî rindtir û xêrtir ku min tu car ji wê avahiyê rindtir tu avahî nedîtibû. Ewan her du mirovan gotin: Heçîka ev avahiya hanê, avahiya şehîdan e." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٣١٩ – وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ: أَنَّ أُمَّ الرُّبَيِّع بِنْت الْبَرَاءِ وَهِيَ أُمُّ حَارِثَةَ بْنِ سُرَاقَةَ، أَتَتِ النَّبِيَّ ﷺ فَقَالَتْ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَلَا تُحَدِّثُنِي عَنْ حَارِثَةَ، وَكَانَ قُتِلَ يَوْمَ بَدْرٍ، فَإِنْ كَانَ فِي الْجَنَّةِ صَبَرْتُ، وَإِنْ كَانَ غَيْرَ ذَلِكَ اِجْتَهَدْتُ عَلَيْهِ فِي الْبُكَاءِ، فَقَالَ: (يَا أُمَّ حَارِثَةَ إِنَّهَا جِنَانٌ فِي الْجَنَّةِ، وَإِنَّ اِبْنَكِ أَصَابَ الْفِرْدَوْسَ الأَعْلَى). رَوَاهُ البُخَارِي.

1319- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Ummur-Rebî'aya keça Bera û dayika Hariseyê kurê Suraqe hate cem Pêxember (s.) û got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu ji min re dikarî behsa rewşa Harise bikî? Ew di herba Bedrê de hatibû şehîd kirin; eger ew di cennetê de be ezê tebat û sebir bikim (bêhna min wê fireh be), lê eger di xeynê cennetê de be ezê li ser wî zehf bigrîm. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Ya Ummu Harise! Di cennetê de pir bax û baxçe hene. Kurê te di nav wan de di Baxçê Firdewsê de ye ku ew di nav baxçê cennetê de yê bilindtir e." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٣٢٠- وَعَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: جِيءَ بِأَبِي إِلَى النَّبِيِّ ﷺ وَقَدْ مُثِّلَ بِهِ، فَوُضِعَ بَيْنَ يَدَيْهِ، فَذَهَبْتُ أَكْشِفُ عَنْ وَجْهِهِ، فَنَهَانِي قَوْمِي فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (مَازَالَتِ الْمَلَائِكَةُ تُظِلُّهُ بِأَجْنِحَتِهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1320- Ji Cabir kurê ‘Ebdullah (r.), got: Cesedê bavê min, ku pê hatibû leyîstin, anîn û danîne pêşya Pêxember (s.). Vêca ez çûm ku ser çavê wî vekim. Lê qewmê min nehiştin ku ez li ser çavê wî binihêrim. Li ser vê yekê Pêxember (s.) got: “Milyaket, heta niha bi per û baskê xwe ewî sîber dikin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٢١- وَعَنْ سَهْلِ بْنِ حُنَيْفٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ سَأَلَ الله تَعَالَى الشَّهَادَةَ بِصِدْقٍ، بَلَّغَهُ اللَّهُ مَنَازِلَ الشُّهَدَاءِ، وَإِنْ مَاتَ عَلَى فِرَاشِهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1321- Ji Sehlê kurê Huneyf (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kî bi dil û can şehadetê ji Xwedê te‘ala bixwaze, li ser cihê xwe bimre jî, Xwedê te‘ala wê ewî bigîhîne meqam û derecê şehîdan.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٢٢- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ طَلَبَ الشَّهَادَةَ صَادِقاً أُعْطِيَهَا، وَلَوْ لَمْ تُصِبْهُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1322- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kî ji dil û can daxwaza şehîdiyê bike, neyê şehîd kirin jî, wê Xwedê te‘ala xêra şehîdiyê bidê.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٢٣- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا يَجِدُ الشَّهِيدُ مِنْ مَسِّ الْقَتْلِ، إِلَّا كَمَا يَجِدُ أَحَدُكُمْ مِنْ مَسِّ الْقَرْصَةِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1323- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Şehîd bi êşa kuştinê nahese, ancax bi qasî hesandina yekî ji we bi êşa gezkirina mûristangê pê dihese.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

١٣٢٤- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ أَبِي أَوْفَى ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فِي بَعْضِ أَيَّامِهِ الَّتِي لَقِيَ

فِيهَا الْعَدُوَّ اِنْتَظَرَ حَتَّى مَالَتِ الشَّمْسُ، ثُمَّ قَامَ فِي النَّاسِ فَقَالَ: (أَيُّهَا النَّاسُ، لَا تَتَمَنَّوا لِقَاءَ الْعَدُوِّ، وَسَلُوا اللَّهَ الْعَافِيَةَ، فإِذَا لَقِيتُمُوهُم فَاصْبِرُوا، وَاعلَمُوا أَنَّ الْجَنَّةَ تَحْتَ ظِلَالِ السُّيوفِ) ثُمَّ قَالَ: (اللَّهُمَّ مُنزِلَ الْكِتَابِ وَمُجْرِيَ السَّحَابِ، وَهَازِمَ الأَحْزَابِ اِهْزِمْهُمْ، وَانْصُرنَا عَلَيْهِمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1324- Ji ʻEbdullahê kurê Ebû Ewfa (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) rojeke ku rastî dijmin hat heta rojê meyl da (nîvro şikest) rawestiya. Û paşê di nav însanan de rabû ser piya û got: “Gelî însanan! Hûn daxwaza rast hatina dijmin nekin û hûn ji Xwedê ʻafiyet û serketinê bixwazin. Lê wextê hûn rastî dijmin hatin jî sebr bikin û hûn baş bizanibin ku cennet di binê siya şûran de ye.” Paşê jî Pêxemberê Xwedê (s.) ev dua xwend: “Xwedayê ku kitêb nazil kiriye, ewr ajotine, firqe û ehzab binxistne! Tu ewan binbixî û li hemberê wan arîkariya me bikî.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٢٥- وَعَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْد ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (ثِنْتَانِ لَا تُرَدَّانِ، أَوْ قَلَّمَا تُرَدَّانِ، الدُّعَاءُ عِنْدَ النِّدَاءِ وَعِنْدَ البَأْسِ حِينَ يُلْحِمُ بَعْضُهُمْ بَعضاً). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1325- Ji Sehlê kurê Seʻd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Du dua hene nayêne vegerandin –û yan jî pir kêm têne vegerandin: Duayê li nik bangê û yek jî duayê li nik giranbûna herbê de ku yek bi yekî asê dibe.” *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٣٢٦- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا غَزَا قَالَ: (اللَّهُمَّ أَنْتَ عَضُدِي وَنَصِيرِي، بِكَ أَحُولُ، وَبِكَ أَصُولُ، وَبِكَ أُقَاتِلُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1326- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wextê derketa herbê wiha digot: “Xwedayo! Tu hêz û arîkarê min î. Bes bi te dilebitim, bes bi te êriş dikim û bes bi te şer dikim.” *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

١٣٢٧- وَعَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ إِذَا خَافَ قَوْماً قَالَ: (اللَّهُمَّ إِنَّا نَجْعَلُكَ فِي نُحُورِهِمْ، وَنَعُوذُ بِكَ مِنْ شُرُورِهِمْ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود بِإِسْنَادٍ صَحِيح.

1327- Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.)

wextê ji qewmekî bitirsiya wiha digot: "Xwedayo! Em parêzgeriya te dikin sîper di navbera xwe û neyaran de û em ji xirabiya wan xwe dispêrine te."
*Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٣٢٨- وَعَنْ اِبْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (الْخَيْلُ مَعْقُودٌ فِي نَوَاصِيْهَا الْخَيرُ إِلَى يَوْمِ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1328-Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xêr di cênîk û eniya hespan de hatiye girêdan heta roja qiyametê."
*Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٢٩- وَعَنْ عُرْوَةَ الْبَارِقِيِّ ﷺ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (الْخَيْلُ مَعْقُودٌ فِي نَوَاصِيْهَا الْخَيْرُ إِلَى يَوْمِ الْقِيَامَةِ الأَجْرُ، وَالْمَغْنَمُ) رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1329- Ji 'Urweyê Bariqî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Xêr; sewab û xenîmet bi cênîk û enya hespan ve hatiye girêdan heta roja qiyametê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٣٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنِ احْتَبَسَ فَرَساً فِي سَبِيلِ اللَّهِ، إِيمَاناً بِاللَّهِ، وَتَصْدِيقاً بِوَعْدِهِ، فَإِنَّ شِبَعَهُ، وَرِيَّهُ وَرَوْثَهُ، وَبَوْلَهُ فِي مِيزَانِهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1330- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî bi Xwedê bawermendî û bi we'd û soza wî jî tesdîqkirî di rêya Xwedê de hespekî xwedî bike, bêguman têrxwarin, têrvexwarin, ters û mîza wî hespî di roja qiyametê de dikeve şêhîna wî kesî." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٣٣١- وَعَنْ أَبِي مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ بِنَاقَةٍ مَخْطُومَةٍ فَقَالَ: هَذِهِ فِي سَبِيلِ اللَّهِ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لكَ بِهَا يَوْمَ الْقِيَامَةِ سَبْعُمِائَةِ نَاقَةٍ كُلُّهَا مَخطُومَةٌ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1331- Ji Ebû Mes'ûd (r.), got: Mirovek bi deveha xwe ya bi hefsar hate bal Pêxember (s.) û got: Ya Pêxemberê Xwedê! Min ev deveha hanê di rêya Xwedê de bexişand. Li ser vê gotinê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Roja qiyametê di şûna vê devehê de hefsed deveh ku temamê wan jî bi hefsar in wê were dayin ji te re." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٣٢ - وَعَنْ أَبِي حَمَّادٍ، وَيُقَالُ: أَبُو سُعَادٍ، وَيُقَالُ: أَبُو أَسَدٍ، وَيُقَالُ: أَبُو عَامِرٍ، وَيُقَالُ: أَبُو عَمْرٍو، وَيُقَالُ: أَبُو الأَسْوَدِ، وَيُقَالُ: أَبُو عَبْسٍ عُقْبَةَ بْنِ عَامِرٍ الْجُهَنِي ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ وَهُوَ عَلَى الْمِنْبَرِ يَقُولُ: (وَأَعِدُّوا لَهُم ما استَطَعْتُم من قُوَّةٍ، أَلَا إِنَّ القُوَّةَ الرَّمِيُ، أَلَا إِنَّ القُوَّةَ الرَّمِيُ، أَلَا إِنَّ القوَّةَ الرَّمْيُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1332- Ji Ebû Hemmad, –jê re Ebû Su‘ad jî, Ebû Esed jî, Ebû ‘Amir jî, Ebû ‘Emr jî, Ebû Eswed jî û Ebû ‘Ebs jî tê gotin– ‘Uqbeyê kurê ‘Amirê Cuhenî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, li ser mînberê wiha digot: “Li hemberê dijmin heta ku hûn dikarin ji xwe re hêz û quwetê amade bikin. Baldar bin! Bêguman hêz û quwet avêtin e. (Bikaranîna sîleh) Baldar bin! Bêguman hêz û quwet avêtin e. Baldar bin! Bêguman hêz û quwet avîêtin e.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٣٣ - وَعَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (سَتُفْتَحُ عَلَيْكُمْ أَرَضُونَ، وَيَكْفِيكُمُ اللَّهُ، فَلا يَعْجِزْ أَحَدُكُمْ أَنْ يَلْهُوَ بِأَسْهُمِهِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1333- Dîsa ji wî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Hûn dê zehf cih û bajaran vegirin, Xwedê te‘ala arîkarê we be. Vêca bila tu kes ji we bi mijûlbûna bi tîrê xwe ve xwe sist neke.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٣٤ - وعَنْهُ أَنَّهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ عُلِّمَ الرَّمْيَ، ثُمَّ تَرَكَهُ، فَلَيْسَ مِنَّا، أَوْ فَقَدْ عَصَى). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1334- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî gotiye: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kî hînî avêtina tîr û riman be û paşê biterikîne ew ji me nîne, û yan jî ewî bêemriya me kiriye.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٣٥ - وَعَنْهُ، قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ اللَّهَ يُدخِلُ بِالسَّهمِ الْوَاحِدِ ثَلَاثَةَ نَفَرِ الْجَنَّةَ: صَانِعَهُ يَحْتَسِبُ فِي صَنْعَتِهِ الْخَيْرَ، وَالرَّامِي بِهِ، وَمُنْبِلَهُ، وَارْمُوا وَارْكَبُوا، وَأَنْ تَرمُوا أَحَبُّ إِلَيَّ مِنْ أَنْ تَرْكَبُوا ومَنْ تَرَكَ الرَّمْيَ بَعْدَ مَا عُلِّمَهُ رَغْبَةً عَنْهُ، فَإِنَّهَا نِعْمَةٌ تَرَكَهَا) أَوْ قَالَ: (كَفَرَهَا). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد.

1335- Dîsa ji wî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Bêguman bi sedem yek tîrekî sê mirov daxilî cennetê dibin: Çêkirvanê wê ku di çêkirina wê de xêrê hêvî dike, tîravêj û yek jî ewê ku arîkarî dike bi dayina tîran ji tîravêjan re. Vêca hûn xwe hînî tîravêjî û sîwariyê bikin. Lê hînbûna we bi tîravêjiyê li cem min ji hînbûna we ya bi sîwariyê hezjêkirîtir e. Kî piştî ku hînî avêtinê dibe bê daxwaz ewê biterikîne bêguman nîmet terikandiye, yan jî nankoriya nîmetê kiriye.” *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

١٣٣٦- وَعَنْ سَلَمَةَ بْنِ الأَكْوَعِ ﷺ قَالَ: مَرَّ النَّبِيُّ ﷺ عَلَى نَفَرٍ يَنْتَضِلُونَ، فَقَالَ: (ارْمُوا بَنِي إِسْمَاعِيلَ فَإِنَّ أَبَاكُمْ كَانَ رَامِياً). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1336- Ji Selemeyê kurê Ekwa‘ (r.), got: Pêxember (s.) di ber çend mirovên ku pêşbaziyê dikin re derbas bû û got: “Hey Benî Îsmaîl! Hûn xwe hînî tîravêjiyê bikin, lewra bavê we (Îsmaîl) tîravêj bû.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٣٣٧- وَعَنْ عَمْرِو بْنِ عَبَسَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ رَمَى بِسَهْمٍ فِي سَبِيلِ اللَّهِ فَهُوَ لَهُ عِدْلُ مُحَرَّرَةٍ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1337- Ji ‘Emrê kurê ‘Ebese (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Kî di rêya Xwedê de tîrekê bavêje, ew tîr ji wî kesî re beramberî azadkirina kolekî ye.” *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

١٣٣٨- وَعَنْ أَبِي يَحْيَى خُرَيْمِ بْنِ فَاتِكٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ أَنْفَقَ نَفَقَةً فِي سَبِيلِ اللَّهِ كُتِبَ لَهُ سَبْعُمِائَةِ ضِعْفٍ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1338- Ji Ebû Yehya Xureymê kurê Fatik (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kî di rêya Xwedê de tiştekî bimezixîne, hefsed carî wê jê re xêr were nivîsandin.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

١٣٣٩- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا مِنْ عَبْدٍ يَصُومُ يَوْماً فِي سَبِيلِ اللَّهِ إِلَّا بَاعَدَ اللَّهُ بِذَلِكَ الْيَوْمِ وَجْهَهُ عَنِ النَّارِ سَبْعِينَ خَرِيفاً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1339- Ji Ebû Se‘îd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kîjan ‘ebdê di rêya Xwedê de rojekê rojî bigre miheqeq Xwedê te‘ala bi sedem ewê

  

rojê bi dûrahiya heftê salan rûyê wî ji êgir dûr dixe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٤٠- وَعَنْ أَبِي أُمَامَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَنْ صَامَ يَوْماً فِي سَبِيلِ اللَّهِ جَعَلَ الله بَيْنَهُ وَبَيْنَ النَّارِ خَنْدَقاً كَمَا بَيْنَ السَّمَاءِ وَالأَرْضِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1340- Ji Ebû Umame (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Kî di rêya Xwedê de rojekê rojî bigre Xwedê te'ala wê di navbera wî û agirî de kend û xendeqeke wekî dûrahiya navbera erd û asîmanan de peyda bike." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١٣٤١- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ مَاتَ وَلَمْ يَغْزُ، وَلَمْ يُحَدِّثْ نَفْسَهُ بِغَزْوٍ مَاتَ عَلَى شُعْبَةٍ مِنَ النِّفَاقِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1341- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî bimre ku cîhad nekiribe û çûyina cîhadê di dilê xwe de jî derbas nekir be bêguman ew li ser şiklek munafiqiyê mirî ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٤٢- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: كُنَّا مَعَ النَّبِيِّ ﷺ فِي غَزَاةٍ، فَقَالَ: (إِنَّ بِالْمَدِينَةِ لَرِجَالاً مَا سِرْتُمْ مَسِيراً، وَلَا قَطَعْتُمْ وَادِياً إِلَّا كَانُوا مَعَكُمْ، حَبَسَهُمُ الْمَرَضُ).

وَفِي رِوَايَةٍ: (حَبَسَهُمُ العُذْرُ) وَفِي رِوَايَةٍ: (إِلَّا شَرَكُوكُمْ فِي الأَجْرِ) رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1342- Ji Cabir (r.), got: Em di herbekê de digel Pêxemberê Xwedê (s.) bûn, vêca ewî (s.) got: "Miheqeq di Medînê de hinek mirov hene ku hûn çiqas bi rê ve diçin û hûn çiqas gelî û newala diborin ew jî digel we ne (di xêrê de). Nexweşiyê ew hiştine."

Di senedekê de: Me'zeretekê ewan girtiye.

Di senedekê de: Miheqeq ew jî di xêrê de hevparê we ne. *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٣٤٣- وَعَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ أَنَّ أَعْرَابِيّاً أَتَى النَّبِيَّ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، الرَّجُلُ يُقَاتِلُ لِلْمَغْنَمِ، وَالرَّجُلُ يُقَاتِلُ لِيُذْكَرَ، وَالرَّجُلُ يُقَاتِلُ لِيُرَى مَكَانُهُ؟ وَفِي رِوَايَةٍ: يُقَاتِلُ شَجَاعَةً، وَيُقَاتِلُ حَمِيَّةً. وَفِي رِوَايَةٍ: وَيُقَاتِلُ غَضَباً، فَمَنْ فِي سَبِيلِ اللَّهِ؟ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ:

(مَنْ قَاتَلَ لِتكُونَ كَلِمَةُ اللَّهِ هِيَ العُلْيَا، فَهُوَ فِي سَبيلِ اللَّهِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1343- Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî bedewî hate bal Pêxember (s.) û got: Ya Pêxemberê Xwedê! Mirov heye ji bo xenîmetê şer dike, mirov heye ji bo ku bê yadkirin şer dike û mirov jî heye ji bo ku cihê wî bê dîtin şer dike.

Di senedekê de: Ji bo mêranî û ji bo nijadparêziyê şer dike.

Di senedekê de: Ji ber hêrsa xwe şer dike. Kîjan ji van di rêya Xwedê de ye? Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Kî ji bo serketina Kelîma Xwedê te'ala (ku la îlahe îllellah Muhemmedun Resûlullah e) şer bike, ew di rêya Xwedê de ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٤٤ - وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ قالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا مِنْ غَازِيَةٍ، أَوْ سَرِيَّةٍ تَغْزُو، فَتَغْنَمُ وَتَسْلَمُ، إِلَّا كَانُوا قَدْ تَعَجَّلُوا ثُلُثَي أُجورِهِمْ، وَمَا مِنْ غازِيةٍ أَوْ سَرِيَّةٍ تُخفِق وَتُصَابُ إِلَّا تَمَّ لَهُمْ أُجورُهُمْ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1344- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kîjan cerd yan jî lîqa herbê bike îcar xenîmetê bîne û bi silametî vegere malê miheqeq ewan ji sisyan du parê xêra xwe pêşîn standine. Û kîjan cerd yan jî lîqa herbê bike lê xenîmetê nestîne û bêne birîndar kirin (yan jî bêne şehîd kirin) miheqeq ewan jî temamê xêra xwe standine." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٤٥ - وَعَنْ أَبِي أُمَامَةَ ﷺ أَنَّ رَجُلاً قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ ائْذَنْ لِي فِي السِّيَاحَةِ فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (إِنَّ سِيَاحَةَ أُمَّتِي الْجِهَادُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ عَزَّ وجلَّ). رَوَاهُ أَبو دَاوود بإِسْنَادٍ جيِّدٍ.

1345- Ji Ebû Umame (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu ji bo seyahetê (ango, terikandina welat) destûra min bide. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Bêguman seyaheta ummeta min cîhada di rêya Xwedê ('ezze we celle) de ye." *Ebû Dawûd bi senedeke ceyyîd rîwayet kiriye.*

١٣٤٦ - وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (قَفْلَةٌ كَغَزْوَةٍ). رَوَاهُ أَبو دَاوود.

1346- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Ji herbê paşdevegerîn jî wekî çûyina herbê ye (ji aliyê xêrê ve)." *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

١٣٤٧- وَعَنِ السَّائِبِ بْنِ يَزِيدَ ﷺ قَالَ: لَمَّا قَدِمَ النَّبِيُّ ﷺ مِنْ غَزْوَةِ تَبُوك تَلَقَّاهُ النَّاسُ، فَتَلَقَّيْتُهُ مَعَ الصِّبْيانِ عَلَى ثَنِيَّةِ الوَدَاعِ. رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

ورَوَاهُ الْبُخَارِي قَالَ: ذَهَبْنَا نَتَلَقَّى رَسُولَ الله ﷺ مَعَ الصِّبيَانِ إِلَى ثَنِيَّةِ الوَدَاعِ.

1347- Ji Sa'ibê kurê Yezîd (r.), got: Wextê Pêxember (s.) ji herba Tebûkê vegeriya însan çûn pêşwaziya wî û min jî di Seniyyetul-Weda‘ê de bi zarokan re ew (s.) pêşwazî kir.” *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

Buxarî wiha rîwayet kiriye: Em digel zarokan ji bo pêşwaziya Pêxemberê Xwedê (s.) heta Seniyyetul-Weda‘ê çûn.”

١٣٤٨- وَعَنْ أَبِي أُمَامَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَنْ لَمْ يَغْزُ، أَوْ يُجَهِّز غَازِياً، أَوْ يَخْلُفْ غَازِياً فِي أَهْلِهِ بِخَيرٍ، أَصَابَهُ اللَّهُ بِقَارِعَةٍ قَبْلَ يَوْمِ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1348- Ji Ebû Umame (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: “Kî di dunyayê de neçe cîhadê, yan cengawerekî amade neke ji bo cîhadê yan jî qenciyê li zar û zêçê cengawer neke, Xwedê te‘ala beriya roja qiyametê miheqeq wê bela û qedake mezin bîne serê wî.” *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٣٤٩- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (جَاهِدُوا الْمُشْرِكِينَ بِأَمْوَالِكُم وَأَنْفُسِكُمْ وَأَلْسِنَتِكُمْ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1349- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: “Hûn bi mal û can û zimanê xwe bi muşrikan re cîhadê bikin.” *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٣٥٠- وَعَنْ أَبِي عَمْرو وَيُقَالُ: أَبُو حَكِيمِ النُّعْمَانِ بْنِ مُقَرِّنٍ ﷺ قَالَ: شَهِدْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ إِذَا لَمْ يُقَاتِلْ مِنْ أَوَّلِ النَّهَارِ أَخَّرَ القِتَالَ حَتَّى تَزُولَ الشَّمْسُ، وَتهبَّ الرِّيَاحُ، ويَنزِلَ النَّصْرُ. رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ والتِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1350- Ji Ebû ‘Emr –jê re Ebû Hekîm jî tê gotin– Nu‘manê kurê Muqerrin (r.), got: Min Pêxemberê Xwedê (s.) dît ku ewî wextê destpêka rojê de şer nekira, şer paşve dixist heta ku nîvro biqulibiya, ba bihata û (mizgîniya) rizgariyê jî nazil bibûya.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

١٣٥١- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَتَمَنَّوا لِقَاءَ الْعَدُوِّ فَإِذَا لَقِيتُمُوهُمْ، فَاصْبِرُوا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1351- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn daxwaza rasthatina dijmin nekin. Lê wextê hûn rastî dijmin hatin jî sebir bikin." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٣٥٢- وَعَنْهُ وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (الْحَرْبُ خَدْعَةٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1352-Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Herb hîle ye." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ جَمَاعَة مِنَ الشُّهَداء فِي ثَوَاب الآخِرَة
## HUKMÊ ŞEHÎDÊN AXIRETÊ

١٣٥٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (الشُّهَدَاءُ خَمْسَةٌ: الْمَطْعُونُ وَالْمَبْطُونُ، وَالْغَرِيقُ، وَصَاحِبُ الْهَدْمِ، والشَّهِيدُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1353- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Şehîd pênc qism in: Kesê ji taûnê, ji zikêşê (virikê), bi xeniqînê, bi mayina dibin dîwar û xweliyê de dimre û yek jî ewê ku di rêya Xwedê de şehîd dibe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٥٤- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا تَعُدُّونَ الشُّهَدَاءَ فِيكُمْ؟ قَالُوا: يَا رَسُولَ الله، مَنْ قُتِلَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ، فَهُوَ شَهِيدٌ، قَالَ: (إِنَّ شُهَداءَ أُمَّتِي إِذاً لَقَلِيلٌ) قَالُوا: فَمَنْ هُمْ يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: (مَنْ قُتِلَ فِي سَبِيلِ اللهِ فَهُوَ شَهِيدٌ، وَمَنْ مَاتَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ فَهُو شَهِيدٌ، وَمَنْ مَاتَ فِي الطّاعُونِ فَهُوَ شَهِيدٌ، وَمَنْ مَاتَ فِي البَطْنِ فَهُوَ شَهِيدٌ، وَالغَرِيقُ شهِيدٌ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1354- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Gelî Sehabiyan! Hûn li bal xwe şehîdan çawa dihesibînin?" Ewan gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Kî di rêya Xwedê de bê kuştin ew şehîd e. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Wî çaxî şehîdên ummeta min kêm in." Sehabiyan gotin: Şehîd kî

ne, ya Pêxemberê Xwede? Ewî (s.) got: Kesê di rêya Xwedê de bê kuştin ew şehîd e, kesê di rêya Xwedê de bimre ew şehîd e, kesê bi ta'ûnê bimre ew şehîd e, kesê bi zikêşê bimre ew şehîd e û kesê bixeniqe ew şehîd e." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٥٥ - وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (مَنْ قُتِلَ دُونَ مَالِهِ، فَهُوَ شَهِيدٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1355- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî di ber malê xwe de bê kuştin ew şehîd e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٥٦ - وَعَنْ أَبِي الأَعْوَرِ سَعِيدِ بْنِ زَيْدِ بْنِ عَمْرِو بْنِ نُفَيْلٍ، أَحَدِ الْعَشَرَةِ الْمَشْهُودِ لَهُمْ بِالْجَنَّةِ ﷺ، قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ قُتِلَ دُونَ مَالِهِ فَهُوَ شَهِيدٌ، وَمَنْ قُتِلَ دُونَ دَمِهِ فَهُوَ شَهِيد، وَمَنْ قُتِلَ دُونَ دِينِهِ، فَهُوَ شَهِيدٌ وَمَنْ قُتِلَ دُونَ أَهْلِهِ، فَهُوَ شَهِيدٌ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1356- Ji Ebû E'wer Se'îdê kurê Zeydê kurê 'Emrê kurê Nufeyl ku yek ji ewan kesê ku xwedanmizgîn bû bi çûyina cennetê ('Eşereyê mubbeşere) ye (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Kî li ber malê xwe de bê kuştin ew şehîd e, kî li ber xûna xwe de bê kuştin ew şehîd e, kî li ber dînê xwe de bê kuştin ew şehîd e û kî li ber ehlê xwe de bê kuştin ew şehîd e." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١٣٥٧ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ الله أَرَأَيْتَ إِنْ جَاءَ رَجُلٌ يُرِيدُ أَخْذَ مَالِي؟ قَالَ: (فَلَا تُعْطِهِ مَالَكَ) قَالَ: أَرَأَيْتَ إِنْ قَاتَلَنِي؟ قَالَ: (قَاتِلْهُ) قَالَ: أَرَأَيْتَ إِنْ قَتَلَنِي؟ قَالَ: (فَأَنْتَ شَهِيدٌ) قَالَ: أَرَأَيْتَ إِنْ قَتَلْتُهُ؟ قَالَ: (هُوَ فِي النَّارِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1357- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Mirovek hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu çi dibêjî eger mirovek hat xwest ku malê min ji min bistîne, ez çi bikim? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu malê xwe nedê." Ewî mirovî got: Lê eger bi min re şer bike, ez çi bikim? Pêxemberê

Xwedê (s.) got: "Tu jî bi wî re şer bike." Dîsa ewî mirovî got: Heger ewî ez kuştim rewşa min wê çawa be? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu şehîd î." Dîsa ewî mirovî got: Lê ez ewî bikujim, wê çawa be? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ew di êgir de ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ الْعِتقِ

## FEZÎLETA AZADKIRINÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿فَلَا اقْتَحَمَ الْعَقَبَةَ ۝ وَمَا أَدْرَاكَ مَا الْعَقَبَةُ ۝ فَكُّ رَقَبَةٍ﴾

"Bila ji astengiyê bibore. Ma tu çi dizanî ew astengî çi ye? Gerden azad kirine."[1]

١٣٥٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ أَعْتَقَ رَقَبَةً مُسْلِمَةً أَعْتَقَ اللهُ بِكُلِّ عُضْوٍ مِنْهُ عُضْواً مِنْهُ مِنَ النَّارِ حَتَّى فَرْجَهُ بِفَرْجِهِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1358- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Kî kolekî misilman azad bike, Xwedê te'ala bi beramberî her azayekî wî koleyî azayekî wî mirovî ji êgir azad dike, heta ku fercê ewî mirovî jî beramberî fercê wî koleyî wê ji êgir azad bike." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٣٥٩- وَعَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ قَالَ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، أَيُّ الأَعْمَالِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: (الإِيمَانُ بِاللَّهِ، وَالْجِهَادُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ) قَالَ: قُلْتُ: أَيُّ الرِّقَابِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: (أَنْفَسُهَا عِنْدَ أَهْلِهَا، وَأَكْثَرُهَا ثَمَناً). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1359- Ji Ebû Zerr (r.), got: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ji kar û 'emelan kîjan baştir e? Ewî (s.) got: "Baweriya bi Xwedê û cîhada di rêya wî de ye." Ebû Zerr (r.) dibêje: Min got: Lê ji 'ebdan (kolan) kîjan baştir e ku bê azadkirin? Ewî (s.) got: "Ewê ku li cem xwedanê xwe qedirtir be û yê bihayê wî jî gelektir be." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 Beled, 90/11-13.

  

## بَابُ فَضْلِ الإِحْسَانِ إِلَى الْمَمْلُوك
## QENCIYA LI KOLAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَاعْبُدُوا الله وَلَا تُشْرِكُوا بِهِ شَيْئاً وَبِالْوَالِدَيْنِ إِحْسَاناً وَبِذِى الْقُرْبَى وَالْيَتَامَى وَالْمَسَاكِينِ وَالْجَارِ ذِى الْقُرْبَى وَالْجَارِ الْجُنُبِ وَالصَّاحِبِ بِالْجَنْبِ وَابْنِ السَّبِيلِ وَمَا مَلَكَتْ أَيْمَانُكُمْ﴾

"Hûn îbadetê Xwedê bikin û qet şirîkan jê re çênekin. Qenciyê digel dê û bav û eqrebayên xwe bikin. Hem qenciyê digel sêwiyan, belengazan, cîranê xwe yê nêzîk (çi cîhetê malê ve, çi cîhetê nesebê ve û çi jî cîhetê din ve be.) û yê dûr, hevalê cem xwe, rêwî (yên ku mêvan in) û hem ewanê ku bindestê we de (kole û cariye) ne."[1]

١٣٦٠- وَعَنِ الْمَعْرُورِ بْنِ سُوَيْد قَالَ: رَأَيْتُ أَبَا ذَرٍّ ﷺ وَعَلَيْهِ حُلَّةٌ، وَعَلَى غُلَامِهِ مِثْلُهَا، فَسَأَلْتُهُ عَنْ ذَلِكَ، فَذَكَرَ أَنَّهُ سَابَّ رَجُلاً عَلَى عَهْدِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَعَيَّرَهُ بِأُمِّهِ، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: إِنَّكَ امْرُؤٌ فِيكَ جَاهِلِيَّةٌ، هُمْ إِخْوَانُكُمْ، وَخَوَلُكُمْ جَعَلَهُمُ اللَّهُ تَحْتَ أَيْدِيكُمْ، فَمَنْ كَانَ أَخُوهُ تَحْتَ يَدِهِ، فَلْيُطْعِمْهُ مِمَّا يَأْكُلُ، وَلْيُلْبِسْهُ مِمَّا يَلبسُ، وَلَا تُكَلِّفُوهُمْ مَا يَغلِبُهُم، فَإِنْ كَلَّفْتُمُوهُمْ فَأَعِينُوهُمْ عَلَيْهِ) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1360- Ji Me'rûrê kurê Suweyd (r.), got: Min Ebû Zerr (r.) dît ku li ser wî kurkek hebû û li ser xulamê wî jî kurkekî mîna kurkê wî hebû. Vêca min pirsa evê çendê jê kir. Ebû Zerr (r.) jî zikir kir ku ewî di dewra Pêxemberê Xwedê (s.) de dijûn li mirovekî kiribû û ew bi dayika wî şermandibû. (Jê re gotibû: Hey kurê jinika reş). Li ser vê yekê Pêxember (s.) got: "Bêguman tu, ew mirov î hîna te de xûyên cahiliyetê hene. Ewan (çenda xulamê we bin jî) birayê we ne. Ew bindestê we ne. Xwedê te'ala ew kirine bin destê we. Vêca kesê ku birayê wî di bindestê wî de be, bila ji xwarina xwe ewî bide xwarin, bila ji kincê ku dipoşe bide poşandin û bila ji barê wan zêdetir

1 Nîsa, 4/36.

li wan neke. Lê eger hûn ji barê wan zêdetir li wan bikin hûn jî arîkariya wan bikin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٦١ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِذَا أَتَى أَحَدَكُمْ خَادِمُهُ بِطَعَامِهِ، فَإِنْ لَمْ يُجْلِسْهُ مَعَهُ، فَلْيُنَاوِلْهُ لُقْمَةً أَوْ لُقْمَتَيْنِ أَوْ أُكْلَةً أَوْ أُكْلَتَيْنِ، فَإِنَّهُ وَلِيَ عِلَاجَهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1361- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxember (s.) got: "Wextê xulamê yekî ji we xwarin ji we re anî, eger hûn ewî digel xwe nedine rûniştandin jî lê hûn parîkî yan du pariyan –yan jî cûtinekî yan du cûtinan– bidine ewî xulamê xwe. Lewra ewî xwarina we amade kiriye." *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ الَّذِي يُؤَدِّي حَقَّ الله وَحَقَّ مَوَالِيه

## FEZÎLETA EWÎ KOLÊ KU HEQÊ XWEDÊ Û HEQÊ XWEDIYÊ XWE BI CIH TÎNE

١٣٦٢ - عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّ الْعَبْدَ إِذَا نَصَحَ لِسَيِّدِهِ، وَأَحْسَنَ عِبَادَةَ الله، فَلَهُ أَجْرُهُ مَرَّتَيْنِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1362- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê kole û xulamek ji xwediyê xwe re dilsoz û rast be û ji Xwedê re îbadetê xwe rind bike, ji wî re du car xêr heye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٦٣ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لِلْعَبْدِ الْمَمْلُوكِ الْمُصْلِحِ أَجْرَانِ) وَالَّذِي نَفْسُ أَبِي هُرَيْرَةَ بِيَدِهِ لَوْلَا الْجِهَادُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ، وَالْحَجُّ، وَبِرُّ أُمِّي، لَأَحْبَبْتُ أَنْ أَمُوتَ وَأَنَا مَمْلُوكٌ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1363- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ji bo wî kole û xulamê ku karê xweyê xwe pak û qenc bi cih tîne, du xêr hene." Ebû Hureyre (r.) dibêje: Ez sond dixwim bi wî Xwedayê ku nefsa Ebû Hureyre di destê wî de ye, eger xêr û sewaba cîhada di rêya Xwedê de, ya hecê û yek jî ya qenciya min ya bi dayika min re zêdetir nebûya min dixwest ku ez bi koletî û xulamî bimrim." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

  

١٣٦٤- وَعَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (اَلْمَمْلُوكِ الَّذِي يُحْسِنُ عِبَادَةَ رَبِّهِ، وَيُؤَدِّي إِلَى سَيِّدِهِ الَّذِي عَلَيْهِ مِنَ الْحَقِّ، وَالنَّصِيحَةِ، وَالطَّاعَةِ، أَجْرَانِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1364- Ji Ebû Mûsayê Eş'arî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kolê ku îbadetê Rebbê xwe rind dike û wezîfa xwe ya li hemberê xwediyê xwe; ji heq, dilsozî û ji îta'etê jî bi cih tîne ji wî re du xêr hene." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٣٦٥- وعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (ثَلَاثَةٌ لَهُمْ أَجْرَانِ: رَجُلٌ مِنْ أَهْلِ الْكِتَابِ آمَنَ بِنَبِيِّهِ، وآمَنَ بِمُحَمَّدٍ ﷺ وَالْعَبْدُ الْمَمْلُوكُ إِذَا أَدَّى حَقَّ الله، وَحَقَّ مَوَالِيهِ، وَرَجُلٌ كَانَتْ لَهُ أَمَةٌ فَأَدَّبَهَا فَأَحْسَنَ تَأْدِيبَها، وَعَلَّمَهَا فَأَحْسَنَ تَعْلِيمَهَا، ثُمَّ أَعْتَقَهَا فَتَزَوَّجَهَا، فَلَهُ أَجْرَانِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1365- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Sê qisim însan hene ku ji wan re du xêr hene: Mirovê xwedankitêb (Cihû yan Fileh in) ku baweriyê bi pêxemberê xwe jî tîne û baweriyê bi Muhemmed (s.) jî tîne. Kole û xulamê ku heqê Xwedê û heqê xwediyê xwe bi cih tîne û yek jî ew mirovê ku cariyeke wî heye vêca bi şeklê rindtir ewê terbiye dike û bi şeklê rindtir hevotin û hînkirina wê pêk tîne, paşê ewê azad dike û dide mêr (dizewicîne), ji bo wî jî du xêr hene." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ فَضْلِ الْعِبَادَة فِي الْهَرْجِ

## FEZÎLETA ÎBADETÊ DI WEXTÊ FITNE Û EWANIYÊ DE

١٣٦٦- عَنْ مَعْقِلِ بْنِ يَسَارٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (الْعِبَادَةُ فِي الْهَرْجِ كَهِجْرَةٍ إِلَيَّ). رَوَاهُ مُسْلِمْ.

1366-Ji Me'qelê kurê Yesar (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Îbadeta di wextê fitne û fesadiyê de wekî hîcreta bal min ve ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْلِ السَّمَاحَةِ فِي الْبَيْعِ والشِّرَاءِ

## FEZÎLETA HÊSANÎ Û XWEŞDÎTINA DI KIRRÎN Û FIROTINÊ DE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَمَا تَفْعَلُوا مِنْ خَيْرٍ فَإِنَّ الله بِهِ عَلِيمٌ﴾

"Çi xêreke ku hûn dikin, her Xweda pê agahdar e."[1]

﴿وَيَا قَوْمِ أَوْفُوا الْمِكْيَالَ وَالْمِيزَانَ بِالْقِسْطِ وَلَا تَبْخَسُوا النَّاسَ أَشْيَاءهُمْ﴾

"Hey miletê min! Hûn bi dirustî pîvan û kêşanê (di kirrîn û firotina xwe de) pêk bînin. Tiştê xelkê bi hîlewarî jê kêm nekin û di erdê de negerin ku tê de xerabiyê bikin."[2]

﴿وَيْل لِلْمُطَفِّفِينَ ۞ الَّذِينَ إِذَا اكْتَالُوا عَلَى النَّاسِ يَسْتَوْفُونَ ۞ وَإِذَا كَالُوهُم أَوْ وَزَنُوهُمْ يُخْسِرُونَ ۞ أَلَا يَظُنُّ أُولئِكَ أَنهُمْ مَبْعُوثُونَ ۞ لِيَوْمٍ عَظِيمٍ ۞ يَوْمَ يَقُومُ النَّاسُ لِرَبِّ الْعَالَمِينَ﴾

"Wey eza û nexweşî ji bo terazî diz û pîvandizan be! Ewê ku wexta bi pîvan û kêşanê ji xelkê dikirrin bi dirustî heqê xwe dixwazin. Lê eger bi kêşan û pîvanê difroşin teraziyê didizin. Ma evanê hanê hizra rabûna piştî mirinê nakin? Ji bo rojeke bi tirs (ku roja dûmahiyê ye). Roja hemû mirov li ber Xwedê û li ber fermana wî radiwestin."[3]

١٣٦٧- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَجُلاً أَتَى النَّبِيَّ ﷺ يَتَقَاضَاهُ فَأَغْلَظَ لَهُ، فَهَمَّ بِهِ أَصْحَابُهُ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (دَعُوهُ فَإِنَّ لِصَاحِبِ الْحَقِّ مَقَالاً) ثُمَّ قَالَ: (أَعْطُوهُ سِنّاً مِثْلَ سِنِّهِ) قَالُوا يا رَسُولَ اللَّهِ لَا نَجِد إِلَّا أَمْثَلَ مِنْ سِنِّهِ، قال: (أَعْطُوهُ فَإِنَّ خَيْرَكُمْ أَحْسَنكُمْ قَضَاءً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1367- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovek hate cem Pêxember (s.) û deynê xwe xwest lê bi Pêxemberê Xwedê (s.) re giran xeber

1 Beqere, 2/215.
2 Hûd, 11/85.
3 Muteffifin, 83/1-6.

da. Li ser vê yekê sehabiyan qesda lêxistina wî mirovî kirin. Lê Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Hûn tev wî nebin. Lewra ji xwediyê deyn re heqê axaftinê heye.” Paşê Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Hûn hev-salê deveha wî bidine wî.” Sehabiyan gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Lê em bes deveheka ji deveha wî mezintir peyda dikin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Bidinê. Lewra xêrtirînê we ew e, yê ku deynê xwe baştir eda dike.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٦٨- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (رَحِمَ الله رَجُلاً سَمْحاً إِذَا بَاعَ، وَإِذَا اشْتَرَى، وَإِذَا اقْتَضَى). رَوَاهُ البُخَارِي.

1368- Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Xwedê te‘ala rehmê li wî mirovî bike ku wextê difroşe, dikirre û deynê xwe dixwaze hêsanî û xweşdîtinê nîşan dide.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٣٦٩- وَعَنْ أَبِي قَتَادَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ سَرَّهُ أَنْ يُنْجِّيَهُ الله مِنْ كُرَبِ يَوْمِ الْقِيَامَةِ، فَلْيُنَفِّسْ عَنْ مُعْسِرٍ أَوْ يَضَعْ عَنْهُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1369- Ji Ebû Qetade (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Kî kêfxweş bibe ku Xwedê te‘ala ewî ji tengiyê roja qiyametê xelas bike bila ew jî demdiyar bide û bêhn fireh be ji kesê di tengasiyê de ye reyan jî bila deynê xwe lê bibexşîne.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٧٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (كَانَ رَجُلٌ يُدَايِنُ النَّاسَ، وَكَانَ يَقُولُ لِفَتَاهُ: إِذَا أَتَيْتَ مُعْسِراً فَتَجَاوَزْ عَنْهُ، لَعَلَّ الله أَنْ يَتَجَاوَزَ عَنَّا، فَلَقِيَ الله فَتَجَاوَزَ عَنْهُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1370- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Mirovekî deyn dida însanan û ji xulamê xwe re jî wiha digot: Wextê te mirovek di tengiyê de dît tu lê bibore, hêvî heye ku Xwedê jî li me bibore. Vêca wextê ew rastî Xwedê hat, Xwedê li wî borî.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٧١- وَعَنْ أَبِي مَسْعُود الْبَدْرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (حُوسِبَ رَجُلٌ مِمَّنْ

كَانَ قَبْلَكُمْ، فَلَمْ يُوجَدْ لَهُ مِنَ الْخَيْرِ شَيْءٌ، إِلَّا أَنَّهُ كَانَ يُخَالِطُ النَّاسَ، وَكَانَ مُوسِراً، وَكَانَ يَأْمُرُ غِلْمَانَهُ أَنْ يَتَجَاوَزُوا عَنِ الْمُعْسِرِ قَالَ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَ: نَحْنُ أَحَقُّ بِذَلِكَ مِنْهُ، تَجَاوَزُوا عَنْهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1371- Ji Ebû Mes‘ûdê Bedrî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Mirovekî di beriya we de hate pirsiyarkirin û muhasebekirin (di gorê de) û tu xêrên wî nehatine dîtin. Bes ew mirov têkilî însanan dibû, hêsanî ji însanan (deyndaran) re nîşan dida û emrê xulamê xwe jî dikir ku li deyndarê desteng bibore. Li ser vê yekê Xwedayê te‘ala got: “Em di nîşandana hêsaniyê dê ji ewî mirovî layiqtir in. (Emrê milyaketan kir û got:) Û hûn jî li wî biborin.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٧٢ - وَعَنْ حُذَيْفَةَ ﷺ قَالَ: أُتِيَ الله بِعَبْدٍ مِنْ عِبَادِهِ آتَاهُ الله مَالاً، فَقَالَ لَهُ: مَاذَا عَمِلْتَ فِي الدُّنْيَا؟ قَالَ: وَلَا يَكْتُمُونَ الله حَدِيثاً قَالَ. يَا رَبِّ آتَيْتَنِي مَالَكَ، فَكُنْتُ أُبَايِعُ النَّاسَ، وَكَانَ مِنْ خُلُقِي الْجَوَازُ، فَكُنْتُ أَتَيَسَّرُ عَلَى الْمُوسِرِ، وَأُنْظِرُ الْمُعْسِرَ، فَقَالَ الله تَعَالَى: أَنَا أَحَقُّ بِذَا مِنْكَ تَجَاوَزُوا عَنْ عَبْدِي فَقَالَ عُقْبَةُ بْنُ عَامِرٍ، وَأَبُو مَسْعُودٍ الأَنصارِيُّ ﷺ: هكَذَا سَمعنَاهُ مِنْ فِي رَسُولِ الله ﷺ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1372- Ji Huzeyfe (r.), got: ‘Ebdekî ku Xwedê te‘ala mal dabûyê anîne hizûra Xwedê. Vêca Xwedê te‘ala ji wî re got: “Te di dunyayê de çi kar û kiryar kir?” Rawî dibêje: –Kes di hizûra Xwedê de nikare tu axaftinê veşêre.– Ewî mirovî jî got: Rebbê min! Te malê xwe dabû min, min jî bi ewî malî bi însanan re da standin kir. Vêca lêborîn, ji xûyê min bû; min hêsanî bi maldarî re dikir û deyndarê desteng jî min demdiyar û muhlet didayê. Li ser vê gotinê Xwedayê te‘ala got: “Ez di nîşandana hêsaniyê de ji te layiqtir im. (Emrê milyaketa kir û got:) Û hûn jî li vî ‘ebdê min biborin.” ‘Uqbeyê kurê ‘Amir û Ebû Mes‘ûdê Ensarî (r.) gotin: Me, ev hedîs bi vî awayî ji devê Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٧٣ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ أَنْظَرَ مُعْسِراً، أَوْ وَضَعَ لَهُ، أَظَلَّهُ اللَّهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ تَحْتَ ظِلِّ عَرْشِهِ يَوْمَ لَا ظِلَّ إِلَّا ظِلُّه). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1373- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kî demdiyar û muhletê nîşanî deyndarê desteng bide yan jî deynê wî bibexşîne, Xwedê te‘ala jî wê di roja qiyametê de ewî mirovî di binê siya ‘erşê xwe de sîber bike; di wê roja ku ji xeynê siya wî tu sî tune ne.” *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

١٣٧٤ - وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ اِشْتَرَى مِنْهُ بَعِيراً، فَوَزَنَ لَهُ، فَأَرْجَحَ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1374- Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) hêştirek ji wî kirrîbû. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) bedelê wê hêştirê kişand/da û hinek jî lê zêde kir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٧٥ - وَعَنْ أَبِي صَفْوَانَ سُوَيْدِ بْنِ قَيْسٍ ﷺ قَالَ: جَلَبْتُ أَنَا وَمَخْرَمَةُ الْعَبْدِيُ بَزّاً مِنْ هَجَرَ، فَجَاءنَا النَّبِيُّ ﷺ فَسَاوَمَنَا بِسَرَاوِيلَ، وَعِنْدِي وَزَّانٌ يَزِنُ بِالأَجْرِ، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ لِلْوَزَّانِ: (زِنْ وَأَرْجِحْ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1375- Ji Ebû Sefwan Suweydê kurê Qeys (r.), got: Min û Mexremeyê ‘Ebdî me ji bajarê Hecerê pirtî/kitan anîbû. Îcar Pêxember (s.) hate bal me û perçê derpîkî bi me re bazar kir. Li cem min jî mirovek hebû tiştê ku li bedelê pirtî dihate dayin diwezinand. Pêxemberê Xwedê (s.) ji ewî mirovî re got: “Tu bikşîne; hinekî jî zêde bikşîne.” *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

# كِتَابُ الْعِلْمِ
# KITÊBA 'ILMÊ

## بَابُ فَضْلِ الْعِلْمِ
## FEZÎLETA ILMÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَقُلْ رَبِّ زِدْنِي عِلْماً﴾

"Tu bibêje: Rebbê min! Zanîna min zêde bike."[1]

﴿قُلْ هَلْ يَسْتَوِى الَّذِينَ يَعْلَمُونَ وَالَّذِينَ لَا يَعْلَمُونَ﴾

"Tu bibêje: Ma ewê dizanin û ewê nizanin wekî hevdu ne?"[2]

﴿يَرْفَعِ الله الَّذِينَ آمَنُوا مِنْكُمْ وَالَّذِينَ أوتُوا الْعِلْمَ دَرَجَاتٍ﴾

"Xwedê, ewê ji we bawerî anîne û zanîn û 'ilm ji wan re hatiye bexşandin, dê wan paye bilind bike.[3]

﴿إِنَّمَا يَخْشَى الله مِنْ عِبَادِهِ الْعُلَمَاءُ﴾

"Bi rastî ji bendeyê Xwedê bes 'alim bi dirustî ji wî ditirsin."[4]

1 Taha, 20/114.
2 Zumer, 39/9.
3 Mucadele, 58/11.
4 Fatir, 35/28.

١٣٧٦- وَعَنْ مُعَاوِيَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ يُرِدِ الله بِهِ خَيْراً يُفَقِّهْهُ فِي الدِّينِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1376-Ji Mu‘awiye (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Xwedê qenciya kê bixwaze ewî di dîn de dixe feqîh/fêmdar dike. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٧٧- وَعَنِ ابنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا حَسَدَ إِلَّا فِي اثْنَتَيْنِ: رَجُلٌ آتَاهُ الله مَالاً فَسَلَّطَهُ عَلَى هَلَكَتِهِ فِي الْحَقِّ، وَرَجُلٌ آتَاهُ الله الْحِكْمَةَ فَهُوَ يَقْضِي بِهَا، وَيُعَلِّمُهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1377- Ji kurê Mes‘ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Bes hesûdiya/dexesiya du mirovan dirust e: Mirovekî ku Xwedê mal dabê û ew jî ewî malî di rêya heqiyê de dimezixîne. Û yek jî ew mirovê ku Xwedê hîkmet kiribe para wî û vêca ew jî bi wê daraz/hukim dike û ewê hînî însanan dike.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٧٨- وَعَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (مَثَلُ مَا بَعَثَنِي الله بِهِ مِنَ الْهُدَى وَالْعِلْمِ كَمَثَلِ غَيْثٍ أَصَابَ أَرْضاً، فَكَانَتْ مِنْهَا طَائِفَةٌ طَيِّبَةٌ قَبِلَتِ الْمَاءَ، فَأَنْبَتَتِ الْكَلأَ، وَالْعُشْبَ الْكَثِيرَ، وَكَانَ مِنْهَا أَجَادِبُ أَمسَكَتِ الْمَاءَ، فَنَفَعَ الله بِهَا النَّاسَ، فَشَرِبُوا مِنْهَا وَسَقَوْا وَزَرَعُوا، وأَصَابَ طَائِفَةً مِنْهَا أُخْرَى إِنَّمَا هِيَ قِيعَانٌ، لَا تُمْسِكُ مَاءً، وَلَا تُنْبِتُ كَلأً، فَذَلِكَ مَثَلُ مَنْ فَقُهَ فِي دِينِ اللَّهِ، وَنَفَعَهُ مَا بَعَثَنِي الله بِهِ، فَعَلِمَ وَعَلَّمَ، وَمَثَلُ مَنْ لَمْ يَرْفَعْ بِذلِكَ رَأْساً، وَلَمْ يَقْبَلْ هُدَى الله الَّذِي أُرْسِلْتُ بِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1378- Ji Ebû Mûsa (r.), got: Pêxember (s.) gotiye: “Mesela wî tiştê Xwedê te‘ala ez pê şandim/kirim Pêxember, ji hîdayetê û ‘ilmê mîna mesela barana pir e ku li ser erdê dibare, vêca qismek ji erdê heye taze ye/rind e, avê li xwe qebûl dike û gelek giyayî heşîn dike. Qismek dî heye bes wekî sedê/bendavê avê digre/berhev dike, Xwedê pê menfe‘etê dide însanan. Vêca ew jê vedixwin û pê zevî û çandin xwe av didin. Qismek dî yê erdê heye ku baran lê dibare ew erd bes erdekî rast e/hulû ye, ne avê digre/kom dike û ne jî giyayê heşîn dike. Vêca ev mesela wekî mesela wî kesê ku dînê Xwedê

de bûyî xwedan‘ilm û xwedanme‘rîfet, tişta ku Xwedê ez pê hinartim fayde da wî û zanî û pê ‘emel kir, bi mirovan jî dazanîn. Û yek jî wekî mesela wî kesê ku serê xwe bi bal vê hîdayetê ve ranekiriye û ew hîdayeta/Qur’ana ku Xwedê ez pê şandim qebûl nekiriye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٧٩- وَعَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ لِعَلِيٍّ ﷺ: (فَوَاللَّهِ: لأَنْ يَهْدِيَ الله بِكَ رَجُلاً وَاحِداً خَيْرٌ لَكَ مِن حُمْرِ النَّعَمِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1379- Ji Sehlê kurê Se‘d (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) ji Hz. ‘Elî (r.) re got: “Ez sond dixwim bi Xwedê, eger Xwedê li ser destê te mirovekî rasterê bike, ji bo te ji devehê sor xêrtir e.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٣٨٠- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (بَلِّغُوا عَنِّي وَلَوْ آيَةً، وَحَدِّثُوا عَنْ بَنِي إِسْرَائِيلَ وَلَا حَرَجَ، وَمَنْ كَذَبَ عَلَيَّ مُتَعَمِّداً فَلْيَتَبَوَّأْ مَقْعَدَهُ مِنَ النَّارِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1380- Ji ‘Ebdullahê kurê ‘Emrê kurê ‘As (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: “Çendî, ayetek be jî hûn ji min teblîx bikin. Hûn ji Benî Îsraîliyan jî dikarin biaxivin. Kesê bi qesd derew li min barke, bila xwe ji cihê xwe yê êgir re amade bike.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٣٨١- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (وَمَنْ سَلَكَ طَرِيقاً يَلْتَمِسُ فِيهِ عِلْماً، سَهَّلَ الله لَهُ بِهِ طَرِيقاً إِلَى الْجَنَّةِ) رَوَاهُ مُسْلِم.

1381- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Çi kesê ji bo xwendina ‘ilim di rêyekê de bimeşe, Xwedê te‘ala dê rêya cennetê jê re hêsan bike. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٨٢- وَعَنْهُ، أَيْضاً ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ دَعَا إِلَى هُدىً كَانَ لَهُ مِنَ الأَجْرِ مِثْلُ أُجُورِ مَنْ تَبِعَهُ لَا يَنْقُصُ ذَلِكَ مِنْ أُجُورِهِم شَيْئاً). رَوَاهُ مُسْلِم.

1382- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê rêya hîdayetê/başiyê bide nîşandan, jê re wekî xêra wanên li pey çûne heye û ji xêra wan kesan jî tiştekî kêm nabe.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٨٣ - وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا مَاتَ ابْنُ آدَمَ انْقَطَعَ عَمَلُهُ إِلَّا مِنْ ثَلَاثٍ: إِلَّا مِنْ صَدَقَةٍ جَارِيَةٍ، أَوْ عِلْمٍ يُنْتَفَعُ بِهِ، أَوْ وَلَدٍ صَالِحٍ يَدْعُو لَهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1383- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê însan bimre ji xeynê sê tiştan deftera 'emelê wî tê girtin: Sedeqa cariye, 'ilmê bikêr/feyde û yek jî zarekî salih ku jê re dua bike." *Muslim riwayet kiriye.*

١٣٨٤ - وَعَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (الدُّنْيَا مَلْعُونَةٌ، مَلْعُونٌ مَا فِيهَا، إِلَّا ذِكرَ الله تَعَالَى، وَمَا وَالاَهُ، وَعَالِماً، أَوْ مُتَعَلماً). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1384- Dîsa ji wî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Bêguman dunya lanetkiriye û tiştê tê de jî lanetkirin in: Bes zikrê Xwedê te'ala, tiştê Xwedê jê hez dike/tiştê bi vê ve baldar e, mu'elim/seyda ne tê de." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٣٨٥ - وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ خَرَجَ فِي طَلَبِ الْعِلْمِ، كَانَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ حَتَّى يَرْجِعَ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1385- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê ji bo teleba 'ilmê ji mal derkeve heta ku bizîvire her di rêya Xwedê de ye." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٣٨٦ - وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَنْ يَشْبَعَ مُؤْمِنٌ مِنْ خَيْرٍ حَتَّى يكونَ مُنْتَهَاهُ الجَنَّةَ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1386-Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman mu'min ji xêrê têr nabe heta biçe cennetê." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

١٣٨٧ - وَعَنْ أَبِي أُمَامَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (فَضْلُ الْعَالِمِ عَلَى الْعَابِدِ كَفَضْلِي عَلَى أَدْنَاكُمْ) ثُمَّ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ الله وَمَلَائِكَتَهُ وَأَهْلَ السَّمَاوَاتِ

وَالأَرْضِ حَتَّى النَّمْلَةَ فِي جُحْرِهَا وَحَتَّى الْحُوتَ لَيُصَلُّونَ عَلَى مُعَلِّمِي النَّاسِ الْخَيْرَ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1387- Ji Ebû Umame (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Qencbûna zanyar li ser 'abidî, wekî qencbûna min ya li ser kêmtirê we ye." Paşê Pêxemberê Xwedê (s.) wiha got: "Bêguman Xweda, milyaket û ehlê erd û asîmanan heta mûrîstanga di kuna xwe de û heta masî jî ji fêrmendê însanan re duaya xêrê dikin." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٣٨٨- وَعَنْ أَبِي الدَّرْدَاءِ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ سَلَكَ طَرِيقاً يَبْتَغِي فِيهِ عِلْماً سَهَّلَ اللَّهُ لَهُ طَرِيقاً إِلَى الْجَنَّةِ، وَإِنَّ الْمَلَائِكَةَ لَتَضَعُ أَجْنِحَتَهَا لِطَالِبِ الْعِلْمِ رِضىً بِمَا يَصْنَعُ، وَأَنَّ الْعَالِمَ لَيَسْتَغْفِرُ لَهُ مَنْ فِي السَّمَاوَاتِ وَمَنْ فِي الأَرْضِ حَتَّى الْحِيتَانُ فِي الْمَاءِ، وَفَضْلُ الْعَالِمِ عَلَى الْعَابِدِ كَفَضْلِ الْقَمَرِ عَلَى سَائِرِ الْكَوَاكِبِ، وَإِنَّ الْعُلَمَاءَ وَرَثَةُ الأَنْبِيَاءِ، وَإِنَّ الأَنْبِيَاءَ لَمْ يُوَرِّثُوا دِينَاراً وَلَا دِرْهَماً وَإِنَّمَا وَرَّثُوا الْعِلْمَ، فَمَنْ أَخَذَهُ أَخَذَ بِحَظٍّ وَافِرٍ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي.

1388- Ji Ebû Derda (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Kî ji bo xwendina 'ilmê di rêyekê de bimeşe, wê Xwedê ji bo wî kesî rêya cennetê hêsan bike. Bêguman milyaket ji suxteyê 'ilmê re, bi sedem ku ji karê wan pirî kêfxweş dibin baskên xwe datînin Û însanê 'Alim; kesê di erd û asîmana de, heta masiyê di avê de jî jê re daxwaza bexişandinê dikin. Fezla 'alimî li ser 'abidî wekî fezla heyvê ye li ser stêrkên din. Bêguman 'alim/zanyar warisê Pêxemberan in, pêxember jî ne dînar û ne jî dirhem tu tiştekî mîras nahêlin, bes 'ilmê bi tenê mîras dihêlin. Vêca kesê 'ilmî bi dest bixe, miheqeq ewî parekî mezin bi dest xistiye." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine.*

١٣٨٩- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (نَضَّرَ اللهُ امْرَأً سَمِعَ مِنَّا شَيْئاً، فَبَلَّغَهُ كَمَا سَمِعَهُ، فَرُبَّ مُبَلِّغٍ أَوْعَى مِنْ سَامِعٍ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1389- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Kesê ku tiştek çawa ji me seh kiriye 'eynî bi wî şeklî ji însanan re teblîx kiribe, Xwedê rûyê wî geş û ronahî dike. Lewra pir mubellex (kesê ku

jê re teblîx tê kirin) ji guhdarî bi bîrtir in." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

١٣٩٠ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ سُئِلَ عَنْ عِلْمٍ فَكَتَمَهُ، أُلْجِمَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ بِلِجَامٍ مِنْ نَارٍ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1390-Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê ji 'ilm û zanebûnekê bê pirskirin û ew jî zanebûna xwe veşêre dê roja qiyametê bi gemeke ji êgir were gemkirin." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye, hedîs hesen e.*

١٣٩١ - وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ تَعَلَّمَ عِلْماً مِمَّا يُبْتَغَى بِهِ وَجْهُ اللَّهِ عَزَّ وَجَلَّ لَا يَتَعَلَّمُهُ إِلَّا لِيُصِيبَ بِهِ عَرَضاً مِنَ الدُّنْيَا لَمْ يَجِدْ عَرْفَ الْجَنَّةِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ) يَعْنِي: رِيحَهَا. رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1391- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî, wî 'ilmê ku pê rizaya Xwedê tê daxwazkirin bes ji bo gihîştina mebest û armanceke dunyayê xwe hîn bike, ew kes di roja qiyametê de bîhna cennetê bîhn nake." *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٣٩٢ - وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ يَقُولُ: (إِنَّ اللَّهَ لَا يَقْبِضُ الْعِلْمَ انْتِزَاعاً يَنْتَزِعُهُ مِنَ النَّاسِ، وَلَكِنْ يَقْبِضُ الْعِلْمَ بِقَبْضِ الْعُلَمَاءِ، حَتَّى إِذَا لَمْ يُبْقِ عَالِماً، اتَّخَذَ النَّاسُ رُؤُوساً جُهَّالاً، فَسُئِلُوا، فَأَفْتَوا بِغَيْرِ عِلْمٍ، فَضَلُّوا وَأَضَلُّوا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1392- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Bêguman Xweda, 'ilmê bi hildana wê ji hafiza însanan ranake, lê ewê bi standina ruhê zanyaran radike. Wilo ku êdî zanyar nemînin û xelk jî însanê nezan ji xwe re têxin serok. Û vêca wê ji wan bê pirskirin, ew jî bê 'ilm û zanîn fetwayê bidin û hem bi xwe rêşaş bibin û hem jî bi xelkê rê bidin şaş kirin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

# كِتَابُ حَمْدِ الله تَعَالَى وَشكْره
# KITÊBA HEMDÊ XWEDÊ Û ŞUKRÊ WÎ

## بَابُ فَضْل الْحَمْد والشُّكْر
## FEZÎLETA HEMD Û ŞUKRÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿فَاذْكُرُونِي أَذْكُرْكُمْ وَاشْكُرُوا لِي وَلَا تَكْفُرُونِ﴾

"Vêca hûn min bînine bîra xwe, ezê jî we bînime bîra xwe. Hûn şukrê min bikin û nankoriya min nekin."[1]

﴿لَئِنْ شَكَرْتُمْ لَأَزِيدَنَّكُمْ﴾

"Eger hûn şikur bikin, ezê jî nîmetê xwe li we zêde bikim."[2]

﴿وَقُلِ الْحَمْدُ لِلَّهِ﴾

"Tu bêje: Pesin û spasî hemû ji bo Xwedê ye."[3]

﴿وَآخِرُ دَعْوَاهُمْ أَنِ الْحَمْدُ لِلَّهِ رَبِّ الْعَالَمِينَ﴾

"Dawiya duayê ehlê cennetê ev e: Hemû pesn û şikur, ji bo Xwedayê perwerdekarê hemû cîhanan e."[4]

1 Beqere, 2/152.
2 Îbrahîm, 14/7.
3 Îsra, 17/111.
4 Yûnus, 10/10.

١٣٩٣- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ أُتِيَ لَيْلَةَ أُسْرِيَ بِهِ بِقَدَحَيْنِ مِنْ خَمْرٍ وَلَبنٍ، فَنَظَرَ إِلَيْهِمَا فَأَخَذَ اللَّبَنَ. فَقَالَ جِبْرِيلُ ﷺ: الْحَمْدُ لِلَهِ الَّذِي هَدَاكَ لِلْفِطْرَةِ لَوْ أَخَذْتَ الْخَمْرَ غَوَتْ أُمَّتُكَ. رَوَاهُ مُسْلِم.

1393- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku ji Pêxember (s.) re di şeva Îsra û Mî'racê de du qedeh hatine anîn; yek mey bû û yek jî şîr bû. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) li wan her duyan nihêrî û şîr hilda. Li ser vê yekê Cibrîl (s.) got: Hemd ji wî Xwedayî re be ku tu ji fitretê re raste rê kirî. Heger te mey hildabûya wê ummeta te harbûya." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٩٤- وَعَنْهُ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (كُلُّ أَمْرٍ ذِي بَالٍ لَا يُبْدَأُ فِيهِ بِالْحَمْدُ لِلهِ فَهُوَ أَقْطَعُ). حَدِيثٌ حَسَنٌ، رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَغَيْرُه.

1394- Dîsa ji wî (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Çiqas karê girîng hene ku bi hemdê Xwedê neyên destpêkirin, ew stewr û bêadan e."
*Hedîs hesen e. Ebû Dawûd û xeynê wî rîwayet kirine*

١٣٩٥- وَعَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا مَاتَ وَلَدُ الْعَبْدِ قَالَ الله تَعَالَى لِمَلَائكَتِهِ: قَبَضْتُمْ وَلَدَ عَبْدِي؟ فيَقُولُونَ: نَعَمْ، فَيَقُولُ: قَبَضْتُمْ ثَمَرَةَ فُؤَادِهِ؟ فيَقُولُونَ: نَعَمْ، فيَقُولُ: مَاذَا قَالَ عَبْدِي؟ فَيَقُولُونَ: حَمِدَكَ وَاسْتَرْجَع، فَيَقُولُ اللَّهُ تَعَالَى: اِبْنُوا لِعَبْدِي بَيْتاً فِي الْجَنَّةِ، وَسَمُّوهُ بَيْتَ الْحَمْدِ).

رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1395- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê zarokê bendeyekî dimre Xwedê ji milyaketan re dibêje: Qey we ruhê zarokê bendeyê min standiye? Ew jî dibêjin: Belê. Xwedê te'ala dîsa dibêje: Qey we fêkiyê ber dilê wî hilda? Ew jî dibêjin: Belê. Xwedê te'ala dibêje: Naxwe bendeyê min çi got? Milyaket dibêjin: Wî hemdê te û îstirca' kir. (Ango got: Bêguman em yê Xwedê ne û bes emê dîsa vegerine bal wî ve). Vêca Xwedê te'ala dibêje: Hûn ji bo vî bendeyê

min di cennetê de malekê ava bikin û ewê bi mala hemdê nav bikin." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٣٩٦ - وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ اللَّهَ لَيَرْضَى عَنِ الْعَبْدِ يَأْكُلُ الأَكْلَةَ فَيَحْمَدُهُ عَلَيْهَا، وَيَشْرَبُ الشَّرْبَةَ، فَيَحْمَدَهُ عَلَيْهَا). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1396- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman Xweda, ji wî 'ebdî razî dibe ku xwarinê dixwe hemdê li ser dike û qurtekê vedixwe hemdê li ser dike." *Muslim rîwayet kiriye.*

# كِتَابُ الصَّلَاةِ عَلَى رَسُولِ الله
# KITÊBA SELEWATÊ LI SER PÊXEMBER

## بَابُ فَضْلِ الصَّلَاةِ عَلَى رَسُولِ الله ﷺ
## FEZÎLETA SELEWATDANA LI SER PÊXEMBER

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿إِنَّ الله وَمَلَائِكَتَهُ يُصَلُّونَ عَلَى النَّبِيِّ يَا أَيُّها الَّذِينَ آمَنُوا صَلُّوا عَلَيْهِ وَسَلِّمُوا تَسْلِيماً﴾

"Bi rastî Xweda û milyaketê li ser pêxember selewatan didin (Selewat ji Xwedê dilovanî ye, ji milyaketan duaye). Gelî ewên bawerî anîne! Hûn jî selewat û silavan li ser wî bidine."[1]

١٣٩٧- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرو بْنِ الْعَاصِ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ صَلَّى عَلَيَّ صَلَاةً، صَلَّى اللَّهُ عَلَيْهِ بِهَا عَشْراً). رَوَاهُ مُسْلِمْ.

1397- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye, wiha digot: "Kesê li ser min selewatekê bîne, Xwedê jî bi vê sedemê deh caran rehmê li wî dike." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٣٩٨- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (أَوْلَى النَّاسِ بِي يَوْمَ الْقِيَامَةِ

1 Ehzab, 33/56.

أَكْثَرُهُمْ عَلَيَّ صَلاَةً). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1398- Ji kurê Mes'ûd (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Nêziktirînê însanên bi bal min ve roja qiyametê ew in ku pir selewatan li ser min tînin." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

١٣٩٩- وَعَنْ أَوْسِ بْنِ أَوْسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ مِنْ أَفْضَلِ أَيَّامِكُمْ يَوْمَ الْجُمُعَةِ، فَأَكْثِرُوا عَلَيَّ مِنَ الصَّلاَةِ فِيهِ، فَإِنَّ صَلاَتكُمْ مَعْرُوضَةٌ عَلَيَّ) فَقَالُوا: يَا رَسُولَ اللهِ، وَكَيْفَ تُعْرَضُ صَلاَتُنَا عَلَيْكَ وَقَدْ أَرَمْتَ؟ قَالَ: يَقُولُ: بَلِيتَ، قَالَ: إِنَّ اللهَ عَزَّ وَجَلَّ حَرَّمَ عَلَى الأَرْضِ أَجْسَادَ الأَنْبِيَاءِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1399- Ji Ewsê kurê Ews (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman xêrtirînê rojên we roja înê ye. Vêca hûn di roja înê de selewatan li ser min pir bînin. Lewra selewatê we, wê ji min re bêne pêşkêş kirin." Vêca sehabiyan gotin: Çawa selewatê me wê ji te re bêne pêşkêş kirin di halê ku hûnê rizyayîbin? Ewî (s.) got: "Bêguman Xweda 'ezze we celle cesedê pêxemberan li ser erdê heram kiriye." *Ebû Dawûd û Tirmizî bi senedeke sehîh rîwayet kirine.*

١٤٠٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (رَغِمَ أَنْفُ رَجُلٍ ذُكِرْتُ عِنْدَهُ فَلَمْ يُصَلِّ عَلَيَّ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1400- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ew mirovê ku navê min li cem bê gotin û ew jî li ser min selewat neyne pozê wî bi erdê re bixişike." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٤٠١- وَعَنْهُ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَجْعَلُوا قَبْرِي عِيداً، وَصَلُّوا عَلَيَّ، فَإِنَّ صَلاَتكُمْ تَبْلُغُنِي حَيْثُ كُنْتُمْ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1401- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn qebra min nekin ciyê cejn û 'îdê. Lê hûn selewatan li ser min bînin, lewra hûn li kîderê dibin bibin selewatê we, wê bigihêjne min." *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٤٠٢-وعَنْهُ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَا مِنْ أَحَدٍ يُسَلِّمُ عَلَيَّ إِلَّا رَدَّ الله عَلَيَّ رُوحِي حَتَّى أَرُدَّ عَلَيْهِ السَّلَامَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1402-Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî silava li min bike miheqeq wê Xwedê dîsa ruhê min vegerîne bal (cesedê) min ve heta ku ez bersîva silava wî bidim." *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٤٠٣- وَعَنْ عَلِيٍّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: الْبَخِيلُ مَنْ ذُكِرْتُ عِنْدَهُ، فَلَمْ يُصَلِّ عَلَيَّ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1403- Ji 'Elî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mirovê tima û çikûs ew e ku navê min li cem bê gotin û ew jî selewata li ser min nebêje." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye; hedîs hesen û sehîh e.*

١٤٠٤- وَعَنْ فَضَالَةَ بْنِ عُبَيْدٍ ﷺ قَالَ: سَمِعَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ رَجُلاً يَدْعُو فِي صَلَاتِهِ لَمْ يُمَجِّدِ الله تَعَالَى، وَلَمْ يُصَلِّ عَلَى النَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (عَجِلَ هَذا) ثُمَّ دَعَاهُ فَقَالَ لَهُ أَوْ لِغَيْرِهِ: (إِذَا صَلَّى أَحَدُكُمْ فَلْيَبْدَأْ بِتَحْمِيدِ رَبِّهِ سُبْحَانَهُ، وَالثَّنَاءِ عَلَيْهِ، ثُمَّ يُصَلِّي عَلَى النَّبِيِّ ﷺ ثُمَّ يَدْعُو بَعْدُ بِمَا شَاءَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1404-Ji Fedaleyê kurê 'Ubeyd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst ku mirovekî di nimêja xwe de dua dikir, lê ne hemdê Xwedê te'ala dikir û ne jî selewat li ser Pêxember (s.) dianî. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Evî mirovî pir lez kir." Û paşê gazî wî kir û jê re –yan ji xeynî wî re– got: "Wextê yekî ji we dua kir, bila bi hemdê Rebbê xwe –ku wî ji tiştê nelayiqê wî ye biparêze– û bi pesnê wî dest pê ke, paşê bila selewatan li ser Pêxember bîne û piştre jî duayê ku dixwaze bila bike." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs sehîh e.*

١٤٠٥- وَعَنْ أَبِي مُحَمَّدٍ كَعْبِ بْنِ عُجْرَةَ ﷺ قَالَ: خَرَجَ عَلَيْنَا النَّبِيّ ﷺ فقُلْنَا: يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَدْ عَلِمْنَا كَيْفَ نُسَلِّمُ عَلَيْكَ، فَكَيْفَ نُصَلِّي عَلَيْكَ؟ قالَ: (قُولُوا:

اللَّهُمَّ صَلِّ عَلَى مُحَمَّدٍ، وَعَلَى آلِ مُحَمَّدٍ، كَمَا صَلَّيْتَ عَلَى آلِ إِبْرَاهِيمَ، إِنَّكَ حَمِيدٌ مَجِيدٌ، اللَّهُمَّ بَارِكْ عَلَى مُحَمَّدٍ، وَعَلَى آلِ مُحَمَّدٍ، كَمَا بَارَكْتَ عَلَى آلِ إِبْرَاهِيمَ، إِنَّكَ حَمِيدٌ مَجِيدٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1405- Ji Ebû Muhemmed Ke'bê kurê 'Ucre (r.), got: Pêxember (s.) derket hate cem me. Me got: Ya Pêxemberê Xwedê! Me zanî ka emê çawa silavê li te bikin. Lê emê çawa selewatan li ser te bînin? Ewî (s.) got: "Hûn bêjin: Xwedayo! Te çawa rehmet li Îbrahîm û alê wî kiriye tu wisa jî rehmê li Muhemmed û alê wî bike. Xwedayo! Te çawa Îbrahîm û alê wî pîroz kiriye tu wisa Muhemmed û alê wî jî pîroz bike. Lewra tu her şirjaw î ji pesn û mezinahiyê re." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٤٠٦- وَعَنْ أَبِي مَسْعُودٍ الْبَدْرِيِّ ﷺ قَالَ: أَتَانَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَنَحْنُ فِي مَجْلِسِ سَعْدِ بْنِ عُبَادَةَ ﷺ، فَقَالَ لَهُ بَشِيرُ بْنُ سَعْدٍ: أَمَرَنَا اللَّهُ تَعَالَى أَنْ نُصَلِّيَ عَلَيْكَ يَا رَسُولَ الله، فَكَيْفَ نُصَلِّي عَلَيْكَ؟ فَسَكَتَ رَسُولُ الله ﷺ حَتَّى تَمَنَّيْنَا أَنَّهُ لَمْ يَسْأَلْهُ، ثُمَّ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (قُولُوا: اللَّهُمَّ صَلِّ عَلَى مُحَمَّدٍ، وعَلَى آلِ مُحَمَّدٍ كَمَا صَلَّيْتَ عَلَى آلِ إِبْرَاهِيمَ، وَبَارِكْ عَلَى مُحَمَّدٍ، وَعَلَى آلِ مُحَمَّدٍ، كَمَا بَارَكْتَ عَلَى آلِ إِبْرَاهِيمَ، إِنَّكَ حَمِيدٌ مَجِيدٌ، وَالسَّلَامُ كَمَا قَدْ عَلِمْتُمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1406- Ji Ebû Mes'ûdê Bedrî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) hate cem me ku em jî di civata Se'dê kurê 'Ubade de rûniştibûn (r.). Vêca Beşîrê kurê Se'd ji Pêxemberê Xwedê (s.) re got: Ya Pêxemberê Xwedê! Xwedê te'ala emrê me kiriye ku em selewatan li ser te bînin, vêca emê çawa selewatan li ser te bînin? Pêxemberê Xwedê (s.) dengê xwe nekir, heta ku me daxwaz û niyaza pirsnekirina wî kir. Paşê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Hûn bêjin: Xwedayo! Te çawa rehmet li Îbrahîm û alê wî kiriye tu wisa jî rehmê li Muhemmed û alê wî bike. Xwedayo! Te çawa Îbrahîm û alê wî pîroz kiriye tu wisa Muhemmed û alê wî jî pîroz bike. Lewra tu her şirjaw î ji pesn û mezinahiyê re. Û silav jî çawa hûn hîn bûne wisa ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٠٧- وَعَنْ أَبِي حُمَيْد السَّاعِدِيِّ ﷺ قَالَ: قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ كَيْفَ نُصَلِّي عَلَيْكَ؟

قَالَ: قولُوا: (اللَّهُمَّ صَلِّ عَلَى مُحَمَّدٍ، وَعَلَى أَزْوَاجِهِ وَذُرِّيَّتِهِ، كَمَا صَلَّيْتَ عَلَى آلِ إِبْرَاهِيمَ، وَبَارِكْ عَلَى مُحَمَّدٍ، وَعَلَى أَزْوَاجِهِ وَذُرِّيَّتِهِ، كَمَا بَارَكتَ عَلَى آلِ إِبْرَاهِيمَ، إِنَكَ حَمِيدٌ مجيدٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1407- Ji Ebû Humeydê Sa'idî (r.), got: Sehabiyan gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Emê çawa selewatan li ser te bînin? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Hûn bêjin: Xwedayo! Te çawa rehmet li alê Îbrahîm kiriye tu wisa jî rehmê li Muhemmed, jinên wî û zurriyeta wî bike. Û te çawa alê Îbrahîm pîroz kiriye tu wisa jî Muhemmed, jinên wî û zurriyeta wî pîroz bike. Lewra tu her layiqê pesn û mezinahiyê yî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

# كِتَابُ الأَذْكَارِ
# KITÊBA ZIKRÊ

## بَابُ فَضْلِ الذِّكْرِ وَالْحَثُّ عَلَيْهِ
## FEZÎLETA ZIKRÊ Û TEŞWÎQA LI SERÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَلَذِكْرُ الله أَكْبَرُ﴾

"Zikrê Xwedê, mezintir e."[1]

﴿فَاذْكُرُونِي أَذْكُرْكُمْ﴾

"Hûn min di bîra xwe de bînin, ezê jî we di bîra xwe de bînim."[2]

﴿وَاذْكُرْ رَبَّكَ فِي نَفْسِكَ تَضَرُّعاً وخِيفَةً وَدُونَ الْجَهْرِ مِنَ القَولِ بالغُدُوَ والآصَال وَلَا تَكُنْ مِنَ الْغَافِلِينَ﴾

"Rebbê xwe bi tirs û zelûlî û bi dengek sivik (navbera dengê nizm û bilind de) di dilê xwe sibeh û êvara di bîra xwe de bîne û ji xafil û bêagehan nebe."[3]

﴿وَاذْكُرُوا اللَّهَ كَثِيراً لَعَلَّكُمْ تفْلِحُونَ﴾

1 'Enkebût, 29/45.
2 Beqere, 2/102.
3 E'raf, 7/205.

“Xwedê gelekî bînine bîra xwe, da ku hûn rizgar bibin.”[1]

﴿إِنَّ الْمُسْلِمِينَ وَالْمُسْلِمَاتِ...إِلَى قَوْلِهِ تَعَالَى... وَالذَّاكِرِينَ اللَّهَ كَثِيراً وَالذَّاكِرَاتِ أَعَدَّ الله لَهُمْ مَغفِرَةً وَأَجْراً عَظِيماً﴾

“Mêrên misilman û jinên misilman, mêrên bawermend û jinên bawermend, mêrên îbadetkar û jinên îbadetkar, mêrên rastego û jinên rastego, mêrên sebirkêş û jinên sebirkêş, mêrên ji Xwedê bitirs û jinên ji Xwedê bitirs, mêrên xêrker û jinên xêrker, mêrên rojîgir û jinên rojîgir, mêrên namûsparêz û jinên namûsparêz û mêrên pir-zikirdar û jinên pir-zikirdar, bi rastî Xweda ji bo van (hemûyan) bexişandinek û xelateke mezin hazir kiriye.”[2]

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا اذْكُرُوا اللَّهَ ذِكْراً كَثِيراً ۝ وَسَبِّحُوهُ بُكْرَةً وَأَصِيلاً﴾

“Gelî ewên bawerîanîne Xwedê gelek bînine bîra xwe û gelek zikrê wî bikin. Sibeh û êvarê Xwedê ji kêmasiyan pak bidêrin.”[3]

١٤٠٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (كَلِمَتَانِ خَفِيفَتَانِ عَلَى اللِّسَانِ، ثَقِيلَتَانِ فِي الْمِيزَانِ، حَبِيبَتَانِ إِلَى الرَّحْمنِ: سُبْحَانَ الله وَبِحَمْدِهِ، سُبْحَانَ الله الْعَظِيمِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1408- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Du gotin hene li ser ziman sivik in, di şehînê de giran in û li bal Rehman jî hezkirî ne ku “*Subhanellahî we bîhemdîhî*”. (Ez Xwedê ji wan sifetên ku ne layiqê wî ne tenzîh dikim û hemdê wî dikim.) Û “*subhannel-lahel-‘ezîm”* in. (Ez Xwedayê mezin ji wan sifetên ku ne layiqê wî ne tenzîh dikim.)” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٤٠٩- وَعَنْهُ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لأَنْ أَقُولَ: سُبْحَانَ الله، وَالْحَمْدُ لِله، وَلَا إِلَهَ إِلَّا الله، وَاللهُ أَكْبَرُ، أَحَبُّ إِلَيَّ مِمَّا طَلَعَت عَلَيْهِ الشَّمْسُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1409- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Bêguman gotina min ya: *Subhanellah, welhemdu lîllah, we la îlahe îllellah, wellahû ekber*. (Ez Xwedê ji sifetên nelayiqê wî tenzîh dikim, hemd her ji Xwedê re ye, ji xeynî Xweda tu îlah tune û Xweda ji her tiştî mestir e.) Li bal min

1 Cum‘e, 62/10.
2 Ehzab, 33/35.
3 Ehzab, 33/41.

  

xweştir e ji wî tiştê ku roj li ser derketiye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤١٠ - وَعَنْهُ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ قَالَ لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَحْدَهُ لَا شَرِيكَ لَهُ، لَهُ الْمُلْكُ، وَلَهُ الْحَمْدُ، وَهُوَ عَلَى كُلِّ شَيءٍ قَدِيرٌ، فِي يَوم مِائَةَ مَرَّةٍ كانَتْ لَهُ عدْلَ عَشرِ رِقَابٍ، وَكُتِبَتْ لَهُ مَائَةَ حَسَنَةٍ، وَمُحِيتْ عَنْهُ مِائَةُ سَيِّئَةٍ، وَكَانَتْ لَهُ حِرْزاً مِنَ الشَّيْطَانِ يَوْمَهُ ذَلِكَ حَتَّى يُمسِيَ، وَلَمْ يَأْتِ أَحَدٌ بِأَفْضَلَ مِمَّا جَاءَ بِهِ إِلَّا رَجُلٌ عَمِلَ أَكْثَرَ مِنْهُ وَقَالَ: مَنْ قَالَ سُبْحَانَ الله وَبِحَمْدِهِ، فِي يَوْمٍ مَائة مَرَّةٍ، حُطَتْ خَطَايَاهُ، وَإِنْ كَانَتْ مِثْلَ زَبَدِ الْبَحْرِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1410- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî di rojekê de sed carî bêje: *La îlahe îllellah wehdehû la şerîke leh, lehul-mulkû we lehul-hemdu we huwe 'ela kullî şey'în qedîr.* (Ji xeynê Xwedê tu îlah tune, ew bi tenê ye û şirîkê wî tune, mulk her ji wî re ye û hemd jî her ji wî re ye. Ew li ser her tiştî şiyandar e.) Xêra wî dibe wekî azadkirina deh koleyan, ji wî re sed xêr têne nivîsandin, sed gunehên wî jî têne paqijkirin û ev zikir ewê rojê heta êvarê ewî mirovî ji şerrê şeytan jî diparêze. Ji bilî ew mirovê ku ji wî bêhtir 'emel kiribe. Û dîsa got: "Kî di rojekê de sed carî bêje: *Subhanellahî we bihemdîhî.* (Ez Xwedê ji wan sifetên ku nelayiqê wî ne tenzîh dikim û ez hemdê wî dikim). Gunehên wî bi qasî kefê behrê be jî têne paqijkirin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٤١١ - وَعَنْ أَبِي أَيُّوبَ الأَنْصَارِيِّ ؓ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَنْ قَالَ: لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَحْدَهُ لَا شَرِيكَ لَهُ، لَهُ الْمُلْكُ، وَلَهُ الْحَمْدُ، وَهُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ، عَشْرَ مَرَّاتٍ، كانَ كَمَنْ أَعْتَقَ أَرْبَعَةَ أَنْفُسٍ مِنْ وَلَدِ إِسْمَاعِيلَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1411-Ji Ebû Eyyûbê Ensarî (r.) ji Pêxemberê Xwedê (s.) hatiye rîwayetkirin gotiye: "Kî deh caran bêje: La îlahe îllellah wehdehû la şerîke leh lehul mulkû we lehul hemd we huwe 'ela kullî şeyîn qedîr. (Ji xeynî Xweda tu îlah tune, ew bi tenê ye û tu şirîkê wî tune, mulk her ji wî re ye û hemd jî her ji wî re ye. Ew li ser her tiştî şiyandar e.) Her wekî ewî çar heb ji nesla Îsmaîl azad kiriye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٤١٢- وَعَنْ أبي ذَرٍّ ﷺ قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَلَا أُخْبِرُكَ بِأَحَبِّ الْكَلَامِ إِلَى اللَّهِ؟ إِنَّ أَحَبَّ الكَلَامِ إِلَى اللَّهِ: سُبْحَانَ الله وَبِحَمْدِهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1412-Ji Ebû Zerê Xiffarî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Ez te agahdar bikim bi gotina herî xweş ya li bal Xwedê? Bêguman gotina herî xweş li bal Xwedê: *Subhanellah we bîhemdîhî* ye. (Xwedê ji her nuqsaniyê munezzeh e, hemd her ji wî re ye.)" *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤١٣- وَعَنْ أَبِي مَالِكٍ الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: الطُّهُورُ شَطْرُ الإِيمَانِ، وَالْحَمْدُ لِلَّهِ تَمْلأُ الْمِيزَانَ، وَسُبْحَانَ الله، وَالْحَمْدُ لِلهِ تَمْلآنِ، أَوْ تَمْلأُ، مَا بَيْنَ السَّمَاوَاتِ وَالأَرْضِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1413- Ji Ebû Malikê Eş'erî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Paqijî nîvê îmanê ye. *Elhemdu lîllah* –xêr û sewaba wê– şehînê/mîzanê tijî dike. *Subhanellah* û *Elhemdu lîllah* ew jî tijî dikin, û yan jî nabeyna asîmanan û erdê tijî dikin. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٤١٤- وَعَنْ سَعْدِ بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ ﷺ، قَالَ: جَاءَ أَعْرَابِيٌّ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ فَقَالَ: عَلِّمْنِي كَلَاماً أَقُولُهُ، قَالَ: (قُل لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَحْدَهُ لَا شَرِيكَ لَهُ، الله أَكْبَرُ كَبِيراً، وَالحَمْدُ لِلهِ كَثِيراً، وَسُبْحَانَ الله رَبِّ الْعَالَمِينَ، وَلَا حَوْلَ وَلَا قُوَّةَ إِلَّا بِاللَّهِ الْعَزِيزِ الْحَكِيمِ) قَالَ: فَهَؤُلَاءِ لِرَبِّي، فَمَا لِي؟ قَالَ: (قُلْ: اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي، وَارْحَمْنِي، وَاهْدِنِي، وَارْزُقْنِي). رَوَاهُ مُسْلِم.

1414- Ji Se'dê kurê Ebû Weqqas (r.), got: bedewiyek hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û got: Tu gotinekê min hîn bike ku ez bêjim. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu bêje: *La îlahe îllellah wehdehû la şerîke leh, ellahu ekber kebîren, wel-hemdû lîllahî kesîren, we subhanellahî Rebbîl 'alemîn, we la hawle we la quwwete îlla bîllahîl-'Ezîzîl-Hekîm.* (Yanî; ji xeynî Xwedî tu îlah tune, ew bi tenê ye û tu şirîkê wî tune. Xwedê her mezintir e, hemd bi gelekî her ji Xwedê re ye, ez wî Xwedayê ku Rebbê 'alema ey ji sifetên ku ne layiqê wî ne tenzîh dikim û hêz û quwet bes bi Xwedayê ku 'Ezîz û Hekîm e)." Ewî mirovî got: Evana ji Rebbê min re ne, ka ji bo min çi hene? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu bêje: Xwedayo! Tu min bibexşînî, rehmê li min bikî, min rasterê bikî û rizqê min bidî." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤١٥- وَعَنْ ثَوْبَانَ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا انْصَرَفَ مِنْ صَلَاتِهِ اسْتَغْفَرَ ثَلَاثاً، وَقَالَ: (اللَّهُمَّ أَنْتَ السَّلَامُ، وَمِنْكَ السَّلَامُ، تَبَارَكْتَ يَا ذَا الْجَلَالِ وَالإِكْرَامِ) قِيلَ لِلأَوْزَاعِيِّ، وَهُوَ أَحَدُ رُوَاةِ الْحَدِيثِ: كَيْفَ الإِسْتِغْفَارُ؟ قَالَ: تَقُولُ: أَسْتَغْفِرُ الله، أَسْتَغْفِرُ الله. رَوَاهُ مُسْلِم.

1415-Ji Sewban (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) piştî nimêjê sê caran îstixfar dianî û wiha digot. Ellahumme Entes-selamû we mînkes-selam, tebarekte ya zel-celalî wel-îkram. (Ango; Xwedayo! Tu Selam î û her selam ji te ye. Ya xwediyê Celal û Îkramê, tu pîroz bikî).” Ji Ewza‘î re, ku ew jî rawiyekî hedîsê ye, hate gotin: Îstixfar çawa ye? Ewî got: Tu bêjî: Estexfîrullah. (Ez daxwaza bexişandinê ji Xwedê dikim.) Estexfîrullah. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤١٦- وَعَنِ الْمُغِيرَةِ بْنِ شُعْبَةَ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ إِذَا فَرَغَ مِنَ الصَّلَاةِ وَسَلَّمَ قَالَ: (لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَحْدَهُ لَا شَرِيكَ لَهُ، لَهُ الْمُلْكُ وَلَهُ الْحَمْدُ، وَهُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ، اللَّهُمَّ لَا مَانِعَ لِمَا أَعْطَيْتَ، وَلَا مُعْطِيَ لِمَا مَنَعْتَ، وَلَا يَنْفَعُ ذَا الْجَدِّ مِنْكَ الْجَدُّ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1416- Ji Muxîreyê kurê Şu‘be (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wextê nimêj xelas bikira wiha digot: Ji xeynî Xweda tu îlah tune, ew bi tenê ye û tu şirîkê wî tune, mulk her ji wî re ye û hemd jî her ji wî re ye. Ew li ser her tiştî şiyandar e. Xwedayo! Tu mani‘ ji dayina te re û tu dayin jî ji pêşgiriya te re tune. Dewlemendiya dewlemend tu feydê nade û dewlemendî jî her ji te re ye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٤١٧- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ الزُّبَيْرِ ﷺ أَنَّهُ كَانَ يَقُولُ دُبُرَ كُلِّ صَلَاةٍ، حِينَ يُسَلِّمُ: لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَحْدَهُ لَا شَرِيكَ لَهُ، لَهُ الْمُلْكُ وَلَهُ الْحَمْدُ، وَهُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ، لَا حَوْلَ وَلَا قُوَّةَ إِلَّا بِاللَّهِ، لَا إِلَهَ إِلَّا الله، وَلَا نَعْبُدُ إِلَّا إِيَّاهُ، لَهُ النِّعْمَةُ، وَلَهُ الفَضْلُ، وَلَهُ الثَّنَاءُ الْحَسَنُ، لَا إِلَهَ إِلَّا الله، مُخْلِصِينَ لَهُ الدِّينَ، وَلَوْ كَرِهَ الْكَافِرُونَ، قَالَ ابْنُ الزُّبَيْرِ: وَكَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُهَلِّلُ بِهِنَّ دُبُرَ كُلِّ صَلَاةٍ مَكْتُوبَةٍ. رَوَاهُ مُسْلِم.

1417- Ji 'Ebdullahê kurê Zubeyr (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî piştî her nimêjê wextê silav dida wiha digot: "Ji xeynî Xweda tu îlah tune, ew bi tenê ye û tu hemtayê wî tune, mulk her ji wî re ye û hemd jî her ji wî re ye. Ew li ser her tiştî şiyandar e. Hêz û quwet bes bi Xwedê ye. Ji xeynî Xweda tu îlah tune, em her Ewî diparêzin, nîmet her yê wî ye, fedl her yê wî ye, pesnê rind her yê wî ye. Ji xeynî Xweda tu îlah tune, em dîn ji wî re pak û saf dikin çendan kafir pê kêfnexweş nebin jî." 'Ebdullahê kurê Zubeyr (r.) got: Pêxemberê Xwedê (s.) piştî her nimêjên ferz bi van zikran tehlîl dikir û evna dixwendin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤١٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ: أَنَّ فُقَرَاءَ الْمُهَاجِرِينَ أَتَوْا رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فقَالُوا: ذَهَبَ أَهْلُ الدُّثُورِ بِالدَّرَجَاتِ الْعُلَى، وَالنَّعِيمِ المُقِيمِ، يُصَلُّونَ كَمَا نُصَلِّي، وَيَصُومُونَ كَمَا نَصُومُ، وَلَهُمْ فَضْلٌ مِنْ أَمْوَالٍ، يَحُجُّونَ وَيَعْتَمِرُونَ، وَيُجَاهِدُونَ، وَيَتَصَدَّقُونَ، فَقَالَ: (أَلَا أُعَلِّمُكُمْ شَيْئاً تُدْرِكُونَ بِهِ مَنْ سَبَقَكُمْ، وَتَسْبِقُونَ بِهِ مَنْ بَعْدَكُمْ، وَلَا يَكُونُ أَحَدٌ أَفْضَلَ مِنْكُمْ إِلَّا مَنْ صَنَعَ مِثْلَ مَا صَنَعْتُمْ؟) قَالُوا: بَلَى يا رَسُولَ اللَّهِ، قالَ: (تُسَبِّحُونَ، وَتَحْمَدُونَ، وَتكَبِّرُونَ خَلْفَ كُلِّ صَلاةٍ ثَلَاثاً وَثَلَاثِينَ) قَالَ أَبُو صَالِحِ الرَّاوِي عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ، لَمَّا سُئِلَ عَنْ كَيْفِيَّةِ ذِكْرِهِنَّ، قَالَ: يَقُولُ: سُبْحَانَ الله، وَالْحَمْدُ لِلَّهِ، والله أَكْبَرُ، حَتَّى يَكُونَ مِنْهُنَّ كُلِّهِنَّ ثَلاثاً وَثَلَاثِينَ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَزَادَ مُسْلِمٌ فِي رِوَايَتِهِ: فَرَجَعَ فُقَرَاءُ الْمُهَاجِرِينَ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالُوا: سَمِعَ إِخْوَانُنا أَهْلُ الأَمْوَالِ بِمَا فَعَلْنَا، فَفَعَلُوا مِثْلَهُ، فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (ذَلِكَ فَضْلُ اللَّهِ يُؤْتِيهِ مَنْ يَشَاءُ).

1418- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku belengazê Muhaciran hatin bal Pêxemberê Xwedê (s.) û gotin: Maldar gihîştine derecên bilind û nîmetên bêdawî. Ew, wekî me nimêjê dikin û wekî me rojiyê digrin. Lê zêdeya malê wan heye: Diçin heccê û 'umrê, cîhadê dikin û sedeqe didin. Vêca ewî (s.) got: "Ez tiştekî hînî we bikim ku hûn bi wî bigihêjine wan kesê beriya we û ji yê piştî xwe jî derbas bibin û tu kes ji we derbas nabe, ancax ewê ku wekî kirina we bikin." Ewan gotin: Belê, Ya Pêxemberê Xwedê! Ewî (s.) got: "Hûn piştî her nimêjê sî û sê caran tesbîh, sî û sê caran hemd

  

û sî û sê caran jî tekbîra bînin.” Ebû Salih, ewê ku hedîs ji Ebû Hureyre rîwayet kiriye got: Wextê ji keyfiyeta zikrê vana hate pirskirin, Pêxemberê Xwedê (s.) got: “*Subhanellah, we lhemdu-lîllah, wellahû ekber* heta her yek ji evan bibe sî û sê.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Muslim di seneda xwe de ev jî zêde kiriye: Li ser vê yekê belengazê Muhaciran dîsa zivirîn û hatin bal Pêxemberê Xwedê (s.) û gotin: Birayê me yê maldar jî van kirinên me bihîstin û ew jî wekî van kirinên me dikin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Ev fezl û kerema Xwedê ye û dide ewî kesê ku divê.”

١٤١٩- وَعنْهُ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ سَبَّحَ الله فِي دُبُرِ كُلِّ صَلَاةٍ ثَلَاثاً وَثَلَاثِينَ، وَحمِدَ اللَّهَ ثَلَاثاً وَثَلَاثِينَ، وكَبَّرَ اللَّهَ ثَلَاثاً وَثَلَاثِينَ، وَقَالَ تَمَامَ الْمِائَةِ: لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَحْدَهُ لَا شَرِيكَ لَهُ، لَهُ الْمُلْكُ وَلَهُ الْحَمْدُ، وَهُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ، غُفِرَتْ خَطَايَاهُ وَإِنْ كَانَتْ مِثْلَ زَبَدِ الْبَحْرِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1419- Dîsa ji wî (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kî piştî her nimêjê sî û sê caran *subhanellah*, sî û sê caran *elhemdu lîllah* û sî û sê caran jî *ellahu ekber* bêje û ya sedî jî bi *la îlahe îllellahu wehdehu la şerîke leh lehul-mulku we lehul-hemd we huwe ela kullî şeyîn qedîr*, temam bike gunehên wî bi qasî kefa behrê be jî têne bexişandin.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٢٠- وَعَنْ كَعْبِ بْنِ عُجْرَةَ رضي الله عنه عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مُعَقِّبَاتٌ لَا يَخِيبُ قَائِلُهُنَّ -أَوْ فَاعِلُهُنَّ- دُبُرَ كُلِّ صَلَاةٍ مَكْتُوبَةٍ: ثَلَاثٌ وَثَلَاثُونَ تَسْبِيحَةً، وَثَلَاثٌ وَثَلَاثُونَ تَحْمِيدَةً، وَأَرْبَعٌ وَثَلَاثُونَ تَكْبِيرَةً). رَوَاهُ مُسْلِم.

1420- Ji Ke‘bê kurê ‘Ucre (r.) ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hinek tesbîhat û zikrê piştî nimêjan têne gotin hene, çi kesê piştî her nimêja ferz wan bixwîne –yan jî bike– şerpeze nabe. Ew gotin ev in: Sî û sê caran *subhanellah*, sih û sê caran *elhemdu lîllah* û sih û çar caran jî *ellahu ekber* e.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٢١- وَعَنْ سَعْدِ بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ رضي الله عنه: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَتَعَوَّذُ دُبُرَ الصَّلَوَاتِ بِهَؤُلَاءِ الْكَلِمَاتِ: (اللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْجُبْنِ وَالْبُخْلِ، وَأَعُوذُ بِكَ مِنْ أَنْ أُرَدَّ إِلَى

أَرْذَلِ الْعُمُرِ، وَأَعُوذُ بِكَ مِنْ فِتْنَةِ الدُّنْيَا، وَأَعُوذُ بِكَ مِنْ فِتْنَةِ الْقَبْرِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1421- Ji Se‘dê kurê Ebû Weqqas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) piştî nimêjan bi van gotinan îstiaze dikir: “Xwedayo! Ez ji tirs û çikûsiyê xwe dispêrime te. Ez ji gihîştina ‘umrê şerpeze xwe dispêrime te. Ez ji fitna dunyayê xwe dispêrime te, ez ji fitna gorê xwe dispêrime te.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٤٢٢- وَعَنْ مُعَاذٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ أَخَذَ بِيَدِهِ وَقَالَ: (يَا مُعَاذُ، وَاللَّهِ إِنِّي لَأُحِبُّكَ) فَقَالَ: (أُوصِيكَ يَا مُعَاذُ لَا تَدَعَنَّ فِي دُبُرِ كُلِّ صَلَاةٍ تَقُولُ: اللَّهُمَّ أَعِنِّي عَلَى ذِكْرِكَ، وَشُكْرِكَ، وَحُسْنِ عِبَادَتِكَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1422- Ji Mu‘az (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) bi destê wî girt û got: “Ya Mu‘az! Bi sond, ez ji te hez dikim û vêca got: Ya Mu‘az! Ezê şîretekê li te bikim û tu piştî nimêjê wê neterikînî, tu wiha bibêje: Xwedayo! Tu li ser zikrê xwe, şukrê xwe û bi pakî pêkanîna îbadetê xwe arîkariya min bikî.” *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٤٢٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا تَشَهَّدَ أَحَدُكُمْ فَلْيَسْتَعِذْ بِاللَّهِ مِنْ أَرْبَعٍ؟ يَقُولُ: اللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنْ عَذَابِ جَهَنَّمَ، وَمِنْ عَذَابِ الْقَبْرِ، وَمِنْ فِتْنَةِ الْمَحْيَا وَالْمَمَاتِ، وَمِنْ شَرِّ فِتْنَةِ الْمَسِيحِ الدَّجَّالِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1423- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê yekî ji we tehiyat xwend, bila xwe ji çar tiştan bispêre Xwedê û bila wiha bêje: Xwedayo! Ez ji ‘ezabê cehennemê, ji ‘ezabê gorê, ji fitna saxî û mirinê û ji xirabiya fitna Mesîhîd-Deccal xwe dispêrime te.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٢٤- وَعَنْ عَلِيٍّ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا قَامَ إِلَى الصَّلَاةِ يَكُونُ مِنْ آخِرِ مَا يَقُولُ بينَ التَشَهُّدِ وَالتَّسْلِيمِ: (اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي مَا قَدَّمتُ وَمَا أَخَرْتُ، وَمَا أَسْرَرْتُ وَمَا أَعْلَنْتُ، وَما أَسْرَفْتُ، وَما أَنْتَ أَعْلَمُ بِهِ مِنِّي، أَنْتَ المُقَدمُ، وَأَنْتَ المُؤَخِّرُ، لَا إِلَهَ إِلَّا أَنْتَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1424- Ji 'Elî (r.), got: Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) radibû ji bo kirina nimêjê, dawiya gotina wî navbera tehiyat û selamê de ev dua bû: "Xwedayo! Tu gunehê min; yê min borandî û yê ku ezê ji vir şûn de bikim, gunehê min yê ku min veşartî kiriye, yê ku min eşkere kiriye û yê ku min bêpîvan kiriye û gunehê min yê ku tu ji min çêtir pê dizanî, bibexşînî. Her tu yî muqedem (yê ku qencan pêş dixe) û her tu yî mu'exer (yê ku neqencan paş dixe). Ji xeynê te tu Xwedê tune." *Muslim riwayet kiriye.*

١٤٢٥- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يُكْثِرُ أَنْ يَقُولَ فِي رُكُوعِهِ وَسُجُودِهِ: (سُبْحَانَكَ اللَّهُمَّ رَبَّنَا وَبِحَمْدِكَ، اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1425- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxember (s.) di ruku, û di sicûda xwe de ev dua pir dixwend: "Xwedê, Rebbê me! Tu ji hemû kêmasiyan dûr î, tu layiqê hemdê yî. Xwedayo! Tu min bibexşînî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٤٢٦- وعَنْهَا: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَقُولُ فِي ركُوعِهِ وَسجُودِهِ: (سُبُّوحٌ قدُّوسٌ، رَبُّ الْمَلَائِكَةِ وَالرُّوحِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1426- Dîsa ji wê (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) di ruku û sicûda xwe de wiha digot: "Xwedê, tu ji hemû kêmasiyan dûr î, tu pir pak û paqij î û tu Rebbê temamê milyaket û (Cebraîl) î." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٢٧- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﵄: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (فَأَمَّا الرُّكُوعُ فَعَظِّموا فِيهِ الرَّبَّ عَزَّ وَجَلَّ، وَأَمَّا السُّجُودُ فَاجْتَهِدُوا فِي الدُّعَاءِ، فَقَمِنٌ أَنْ يُسْتَجَابَ لَكُمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1427- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Heçîka rukû', hûn di wê de Rebbê 'ezze we celle bilind kin. (Ango bibêjin: Subhane rebbiyel-'ezîm we bîhemdîhî). Lê di secdê de hûn ji duayê re bixebitin, lewra duayê di secdê de hêja ye ku bê qebûl kirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٢٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﵁ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (أَقْرَبُ مَا يَكُونُ الْعَبْدُ مِنْ رَبِّهِ وَهُوَ سَاجِدٌ، فَأَكْثِرُوا الدُّعَاءَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1428- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.)

gotiye: "Bi piranî 'ebd di halê secdê de nêzîkî Rebbê xwe ye. Vêca hûn di secdê de zehf dua bikin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٢٩- وَعَنْهُ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَقُولُ فِي سُجُودِهِ: (اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي ذَنْبِي كلَّهُ: دِقَّهُ وَجِلَّهُ، وَأَوَّلَهُ وآخِرَهُ، وَعَلَانِيَتَهُ وَسِرَّه). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1429- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) di secda xwe de digot: "Xwedayo! Tu piçûk û mezin, pêşî û paşî, eşkere û veşartiyê gunehê min hemûkî bibexşînî." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٣٠- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: افْتَقَدْتُ النَّبِيَّ ﷺ ذَاتَ لَيْلَةٍ، فَتَحَسَّسْتُ، فَإِذَا هُوَ رَاكِعٌ -أَوْ سَاجِدٌ- يَقُولُ: (سُبْحَانَكَ وَبِحَمْدِكَ لَا إِلَهَ إِلَّا أَنْتَ).

وَفِي رِوَايَةٍ: فَوَقَعَت يَدِي عَلَى بَطْنِ قَدَمَيْهِ، وَهُوَ فِي المَسْجِدِ، وَهُمَا مَنْصُوبَتَانِ، وَهُوَ يَقُولُ: (اللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِرِضَاكَ مِنْ سَخَطِكَ، وَبِمُعَافَاتِكَ مِنْ عُقُوبَتِكَ، وَأَعُوذُ بِكَ مِنْكَ، لَا أُحْصِي ثَنَاءً عَلَيْكَ أَنْتَ كَمَا أَثْنَيْتَ عَلَى نَفْسِكَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1430- Ji 'Aîşe (r.), got: Şevekê ez li Pêxember (s.) geriyam û vêca min destê xwe li wî peland û min lê nihêrî ku ew di rukû'de ye –yan jî di secdê de ye– û wiha dibêje: "Subhaneke we bîhemdîk la îlahe îlla ente."

Di senedekê de: Hz. 'Aîşe (r.) got: Min destê xwe lê gerand, destê min kete ser kefa lingê wî (s.), ku ew (s.) di mizgeftê de bû û her du piyê wî jî çikyayîbûn û ewî (s.) wiha digot: "Xwedayo! Ez bi riza te, xwe ji hêrsa te diparêzim. Ez bi 'efûya te, xwe ji 'ezabê te diparêzim. Ez dîsa bi arîkariya te xwe ji ('ezabê) te diparêzim. Ez nikarim pesnê te bidim wekî ku te pesnê xwe dayî yî." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٣١- وَعَنْ سَعْدِ بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ ﵁ قَالَ: كُنَّا عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: (أَيَعْجِزُ أَحَدُكُمْ أَنْ يَكْسِبَ فِي كُلِّ يَوْمٍ أَلْفَ حَسَنَةٍ) فَسَأَلَهُ سَائِلٌ مِنْ جُلَسَائِهِ: كَيْفَ يَكْسِبُ أَلْفَ حَسَنَةٍ؟ قَالَ: (يُسَبِّحُ مِائَةَ تَسْبِيحَةٍ، فَيُكْتَبُ لَهُ أَلْفُ حَسَنَةٍ، أَوْ يحطُّ عَنْهُ أَلْفُ خَطِيئَةٍ) رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1432- Ji Se'dê kurê Ebû Weqqas (r.), got: Em li cem Pêxemberê Xwedê (s.) bûn, ewî got: "Qey kes ji we nikare her roj hezar xêrî bi dest xwe bixe."

Vêca yekî ji ehlê civatê pirs kir: Çawa wê hezar xêrî kar bike? Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Sed carî *subhanellah* bêje, wê jê re hezar xêr bê nivîsandin yan jî hezar guneh bê 'efûkirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٣٢- وَعَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (يُصْبِحُ عَلَى كُلِّ سُلَامَى مِنْ أَحَدِكُمْ صَدَقَةٌ: فَكُلُّ تَسْبِيحَةٍ صَدَقَةٌ، وَكُلُّ تَحْمِيدَةٍ صَدَقَةٌ، وَكُلُّ تَهْلِيلَةٍ صَدَقَةٌ، وَكُلُّ تَكْبِيرَةٍ صَدَقَةٌ، وَأَمْرٌ بِالْمَعْرُوفِ صَدَقَةٌ، وَنَهْيٌ عَنِ الْمُنْكَرِ صَدَقَةٌ، وَيُجْزِئُ مِنْ ذَلِكَ رَكْعَتَانِ يَرْكَعُهُمَا مِنَ الضُّحَى). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1432- Ji Ebû Zerrê Xiffarî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê ji we lê bû sibeh li ser her mavikekê wî sedeqeyek heye: Her tesbîhek *subhanellah*, her tehmîdek *elhemdu lîllah*, her tehlîlek *la îlahe îllellah* sedeqe ye. Emrê bi qenciyê sedeqe ye û men'a ji xirabiyê sedeqe ye. Lê du rekatên nimêja piştî tavderketinê/nimêja duhayê dikeve ber van hemûyan." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٣٣- وَعَنْ أُمِّ الْمُؤْمِنِينَ جُوَيْرِيَةَ بِنْتِ الْحَارِثِ ﷺ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ خَرَجَ مِنْ عِنْدِهَا بُكْرَةً حِينَ صَلَّى الصُّبْحَ، وَهِيَ فِي مَسْجِدِهَا، ثُمَّ رَجَعَ بَعْدَ أَنْ أَضْحَى وَهِيَ جَالِسَةٌ، فَقَالَ: (مَا زِلْتِ عَلَى الْحَالِ الَّتِي فَارَقْتُكِ عَلَيْهَا؟) قَالَتْ: نَعَمْ: فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (لَقَدْ قُلْتُ بَعْدَكِ أَرْبَعَ كَلِمَاتٍ ثَلَاثَ مَرَّاتٍ، لَوْ وُزِنَتْ بِمَا قُلْتِ مُنْذُ الْيَوْمِ لَوَزَنَتْهُنَّ: سُبْحَانَ الله وبِحَمْدِهِ عَدَدَ خَلْقِهِ، وَرِضَى نَفْسِهِ، وَزِنَةَ عَرْشِهِ، وَمِدَادَ كَلِماتِهِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: (سُبْحَانَ الله عَدَدَ خَلْقِهِ، سُبْحَانَ الله رِضَى نَفْسِهِ، سُبْحَانَ الله زِنَةَ عَرْشِهِ، سُبْحَانَ الله مِدَادَ كَلِمَاتِهِ).

وَفِي رِوَايَةِ التِّرْمِذِي: (أَلَا أُعَلِّمُكِ كَلِمَاتٍ تَقُولِينَهَا؟ سُبْحَانَ الله عَدَدَ خَلْقِهِ، سُبْحَانَ الله عَدَدَ خَلْقِهِ، سُبْحَانَ الله عَدَدَ خَلْقِهِ، سُبْحَانَ الله رِضَا نَفْسِهِ، سُبْحَانَ الله رِضَا نَفْسِهِ، سُبْحَانَ الله رِضَا نَفْسِهِ، سُبْحَانَ الله زِنَةَ عَرْشِهِ، سُبْحَانَ الله مِدَادَ كَلِمَاتِهِ، كُلُّهُنَّ ثَلَاثَ مَرَّاتٍ).

1433- Ji Cuweyriya keça Haris (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) ji cem wê wextê nimêja sibehê kir, hinekî bi zû derket ku ew hîna di nimêjgeha xwe de bû. Piştî nimêja duhayê kir, zivirî hat lê nihêrî Cuweyriye hê rûniştiye. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Hê tu li ser wî halî yî ku min tu li ser hiştî û ez çûm?" Ewê (r.) got: Belê. Pêxember (s.) got: "Bi sond, min piştî te çar kelîme sê caran got, eger ew bên pîvan bi duayê te yê ku heta îro te gotine wê di xêr û sewabê de wekî hevdu bin: Bi qasî hejmara mexlûqatê Xwedê, rizaya zatê wî, giraniya 'erşê wî û dirêjaya kelîmên wî ez ewî (c.c.) ji kêmasiyan tenzîh dikim û ez hemdê wî dikim." *Muslim rîwayet kiriye.*

Di senedeke wî de jî: Bi qasî hejmara mexlûqatan ez Xwedê ji kêmasiyan tenzîh dikim, bi qasî hejmara rizaya zatê Xwedê ez ewî (c.c.) ji kêmasiyan tenzîh dikim, bi qasî hejmara giraniya 'erşê Xwedê ez ewî (c.c.) ji kêmasiyan tenzîh dikim û bi qasî hejmara dirêjaya kelîmên Xwedê ez ewî (c.c.) ji kêmasiyan tenzîh dikim."

Di seneda Tirmizî de: "Ez çend kelîmên ku tu bêjî hînî te bikim? Bi qasî hejmara mexlûqatan ez Xwedê ji kêmasiya tenzîh dikim, bi qasî hejmara mexlûqatan ez Xwedê ji kêmasiyan tenzîh dikim, bi qasî hejmara mexlûqatan ez Xwedê ji kêmasiyan tenzîh dikim, bi qasî hejmara rizaya zatê Xwedê ez ewî (c.c.) ji kêmasiyan tenzîh dikim, bi qasî hejmara rizaya zatê Xwedê ez ewî (c.c.) ji kêmasiyan tenzîh dikim, bi qasî hejmara rizaya zatê Xwedê ez ewî (c.c.) ji kêmasiyan tenzîh dikim, bi qasî hejmara giraniya 'erşê Xwedê ez ewî (c.c.) ji kêmasiyan tenzîh dikim, bi qasî hejmara giraniya 'erşê Xwedê ez ewî (c.c.) ji kêmasiyan tenzîh dikim, bi qasî hejmara giraniya 'erşê Xwedê ez ewî (c.c.) ji kêmasiyan tenzîh dikim, bi qasî hejmara dirêjaya kelîmê Xwedê ez ewî (c.c.) ji kêmasiyan tenzîh dikim, bi qasî hejmara dirêjaya kelîmê Xwedê ez ewî (c.c.) ji kêmasiyan tenzîh dikim, bi qasî hejmara dirêjaya kelîmê Xwedê ez ewî (c.c.) ji kêmasiyan tenzîh dikim."

١٤٣٤ - وَعَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَثَلُ الَّذِي يَذْكُرُ رَبَّهُ وَالَّذِي لَا يَذْكُرُهُ، مَثَلُ الْحَيِّ وَالمَيِّتِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

وَرَوَاهُ مُسْلِم فَقَالَ: (مَثَلُ الْبَيْتِ الَّذي يُذْكَرُ اللَّهُ فِيهِ، وَالْبَيْتِ الَّذِي لَا يُذْكَرُ اللَّهُ فِيهِ، مَثَلُ الْحَيِّ وَالْمَيِّتِ).

1434- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Ew kesê ku Rebbê xwe bi bîr tîne û ew kesê ku Rebbê xwe bi bîr nayîne wekî mesela sax û mirî ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Muslim jî rîwayet kiriye û gotiye: "Mesela wê mala ku tê de zikrê Xwedê tê kirin û ew mala ku tê de zikrê Xwedê nayê kirin wekî mesela sax û mirî ye."

١٤٣٥-وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: يَقُولُ اللَّهُ تَعَالَى: (أَنَا عِنْدَ ظَنِّ عَبْدِي بِي، وَأَنَا مَعَهُ إِذَا ذَكَرَنِي، فَإِنْ ذَكَرَنِي فِي نَفْسِهِ، ذَكَرْتُهُ فِي نَفْسِي، وَإِنْ ذَكَرَنِي فِي مَلإٍ، ذَكَرْتُهُ فِي مَلإٍ خَيْرٍ مِنْهُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1435- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedê te'ala dibêje: Ez cem zenna 'ebdê min ya bi min re me. (Ango; 'ebdê min di derbarê min de bi çi awayî zen bike ezê bi wî awayî derbarê wî de mu'amelê bikim). Ez digel wî me wextê ew min bi bîr bîne: Vêca ew eger di nefsa xwe de min bi bîr bîne ezê jî wî di nefsa xwe de bi bîr bînim, eger ew di nav civatekê de min bi bîr bîne ezê jî ewî di nav civateke ji wê civatê xêrtir de bi bîr bînim." *Buxari û Muslim rîwayet kirine.*

١٤٣٦- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (سَبَقَ الْمُفَرِّدُونَ) قَالُوا: وَمَا الْمُفَرِّدُونَ يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: (الذَاكِرُونَ اللَّهَ كَثِيراً وَالذَّاكِرَاتُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1436- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Muferridûn, pêş de çûn. Sehabiyan gotin: Muferridûn çi kes in, ya Pêxemberê Xwedê? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Muferridûn, ew zilam û jinên ku gelekî zikrê Xwedê dikin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٣٧- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: أَفْضَلُ الذِّكْرِ: (لَا إِلَهَ إِلَّا الله). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1437- Ji Cabir (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Xêrtirînê zikran, *la îlahê îllellah* e. *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٤٣٨- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ بُسْرٍ ﷺ أَنَّ رَجُلاً قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، إِنَّ شَرَائِعَ الإِسْلَامِ قَدْ كَثُرَتْ

عَلَيَّ، فَأَخْبِرْنِي بِشَيءٍ أَتَشَبَّثُ بِهِ قَالَ: (لَا يَزَالُ لِسَانُكَ رَطْباً مِنْ ذِكْرِ اللَّهِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1438- Ji 'Ebdullahê kurê Busr (r.) hatiye rîwayetkirin ku miroveKî got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ehkamê Îslamê yên şer'î li ser min pir bûne. Vêca tu ji min re bêje ka ez xwe bi çi şidyayî bigrim? Ewî (s.) got: "Bila zimanê te her bi zikrê Xwedê şil be." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

١٤٣٩- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَنْ قَالَ: سُبْحَانَ الله وَبِحَمْدِهِ، غُرِسَت لَهُ نَخْلَةٌ فِي الْجَنَّةِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1439- Ji Cabir (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Kî *subhanellahî we bîhemdîhî* bêje, di cennetê de dareke xurmê jê re tê çandin." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٤٤٠- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ: (لَقِيتُ إِبْرَاهِيمَ ﷺ لَيْلَةَ أُسْرِيَ بِي، فَقَالَ: يَا مُحَمَّدُ أَقْرِئْ أُمَّتَكَ مِنِّي السَّلَامَ، وَأَخْبِرْهُمْ أَنَّ الْجَنَّةَ طَيِّبَةُ التُّرْبَةِ، عَذْبَةُ الْمَاءِ، وَأَنَّهَا قِيعَانٌ، وَأَنَّ غِرَاسَهَا: سُبْحَانَ الله، وَالْحَمْدُ لِلهِ، وَلَا إِلَهَ إِلَّا الله، وَاللهُ أَكْبَرُ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1440- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Şeva Îsrayê ez rastî Îbrahîm hatim, vêca ewî ji min re got: Ya Muhemmed, tu ji ummeta xwe re silavên min bêje û tu wan agahdar bike ku cennet axa wê rind e, ava wê şêrîn e, erdê wê deşt e û tov û toximê wê jî: *Subhanellah, welhemdu lîllah, we laîlahe îllellah û wellahu ekber* e." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٤٤١- وَعَنْ أَبِي الدَّرْدَاءِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَلَا أُنَبِّئُكُمْ بِخَيْرِ أَعْمَالِكُمْ، وَأَزْكَاهَا عِنْدَ مَلِيكِكُمْ، وَأَرْفَعِهَا فِي دَرَجَاتِكُمْ، وَخَيْرٍ لَكُمْ مِنْ إِنْفَاقِ الذَّهَبِ وَالفِضَّةِ وَخَيْرٍ لَكُمْ مِنْ أَنْ تَلْقَوْا عَدُوَّكُم فَتَضرِبُوا أَعْنَاقَهُم، وَيضْرِبُوا أَعْنَاقَكُم؟) قَالُوا: بَلَى، قَالَ: (ذِكْرُ اللَّهِ تَعَالَى) رَوَاهُ التِّرْمِذِي. قَالَ الحَاكِمُ أَبُو عَبْدِ اللَّهِ: إِسْنَادُهُ صَحِيح.

1441- Ji Ebû Derda (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ma ez we

agahdar bikim bi xêrtirîn û paqûtirînê kar û kiryarê we, li cem xwediyê (rebbê) we, bi ‘emelê we yê herî bilindker di niqirê we de, ji we re xêrtir be ji mezixandina zêr û zîvî û dîsa xêrtiryê be di derbarê we de ji vê yekê ku hûn rastî dijminê xwe bên vêca hûn li stûyê wan xin û ew jî li stûyê we bexin?” Sehabiyan gotin: Belê. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Zikrê Xwedayê te‘ala ye.” *Tirmizî riwayet kiriye. Hakim Ebû ‘Ebdullah gotiye isnada wê sehîh e.*

١٤٤٢- وَعَنْ سَعْدِ بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ ﷺ أَنَّهُ دَخَلَ مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ عَلَى إِمْرَأَةٍ وَبَيْنَ يَدَيْهَا نَوًى -أَوْ حَصًى- تُسَبِّحُ بِهِ فَقَالَ: (أُخْبِرُكِ بِمَا هُوَ أَيْسرُ عَلَيْكِ مِنْ هَذا -أَوْ أَفْضَلُ؟ فَقَالَ: سُبْحَانَ الله عَدَدَ مَا خَلَقَ فِي السَّمَاءِ، وَسُبْحَانَ الله عَدَدَ ما خَلَقَ فِي الأَرْضِ، وَسُبْحَانَ الله عَدَدَ مَا بَيْنَ ذَلِكَ، وَسُبْحَانَ الله عَدَدَ ما هُوَ خَالِقٌ، والله أَكْبَر مِثْلَ ذَلِكَ، وَالْحَمْدُ لِلهِ مِثْلَ ذلِكَ، وَلَا إِلَهَ إِلَّا الله مِثْلَ ذَلِكَ، وَلَا حَوْلَ وَلَا قوَّةَ إِلَّا بِاللَّهِ مِثْلَ ذلِكَ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1442- Ji Se‘dê kurê Ebû Weqqas (r.) hatiye rîwayetkirin ku ew digel Pêxemberê Xwedê (s.) çûn bal jinekê û li ber wê jinikê jî dendik –yan jî kevir– hebûn û wê bi wan tesbîh dikişand. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Ez agahî bidim te bi tiştekî ji te re ji vêya hêsantir –yan jî xêrtir– be?” Û got. “Bi qasî hejmara aferîdê Xwedayê di asîmanan de ez wî ji kêmasiyan tenzîh dikim, bi qasî hejmara aferîdê Xwedayê di erdê de ez wî ji kêmasiyan tenzîh dikim, bi qasî hejmara aferîdê Xwedayê di navbera van her duyan de ez wî ji kêmasiyan tenzîh dikim û bi qasî hejmara ku Xwedê aferîndêr e ez wî ji kêmasiyan tenzîh dikim. *Ellahu ekber* jî bi vî awayî, ‘*Elhemdu* lîllah’ jî bi vî awayî, ‘La îlahe îllellah’ jî bi vî awayî û ‘La hawle we la quwete *lîlla* bîllah’ jî bi vî awayî ye.” *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٤٤٣- وَعَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَلَا أَدُلُّكَ عَلَى كَنْزٍ مِنْ كُنُوزِ الْجَنَّةِ؟ فَقُلْتُ: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ، قالَ: (لَا حَوْلَ وَلَا قُوَّةَ إِلَّا بِالله). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1443- Ji Ebû Mûsa (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: “Ez te agahê xezînekî ji xezînê cennetê bikim?” Min got: Belê, ya Pêxemberê Xwedê! Ewî (s.) got: “La hawle we la quwwete îlla bîllah e.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ ذِكْرِ اللهِ تَعَالَى فِي جَمِيعِ الأَوْضَاعِ وَالأَوْقَاتِ
## ZIKRÊ XWEDAYÊ TE'ALA BI HER AWAYÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿إِنَّ فِي خَلْقِ السَّمَاوَاتِ وَالأَرْضِ وَاخْتِلَافِ اللَّيْلِ وَالنَّهَارِ لآيَاتٍ لأُولِي الأَلْبَابِ ۞ الَّذِينَ يَذْكُرُونَ اللَّهَ قِيَاماً وَقُعُوداً وَعَلَى جُنُوبِهِمْ﴾

"Bi rastî di çêkirina erd û asîmanan de, di quherîna şev û rojan de ayet û nîşan hene ji bo kesê jîr û aqildar. (Kesê jîr û aqildar) ewên li piyan, rûniştî û li ser teniştê (kêlekê) dirêjkirî Xweda tînine bîra xwe û zikrê wî dikin. Hizra xwe di çêkirina erd û asîmanan de dikin, (û dibêjin:) Xwedayo! (Ev cîhan) te bi pûçî çênekiriye. Pakî, her ji bo te ye. Êdî tu me ji 'ezabê êgir biparêz."[1]

١٤٤٤- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَذْكُرُ الله تَعَالَى عَلَى كُلِّ أَحْيَانِهِ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1444- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) di hemû wextan de zikrê Xwedê dikir. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٤٥- وعنِ ابنِ عبّاسٍ ﵄ عنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَوْ أَنَّ أَحَدَكُمْ إِذَا أَرَادَ أَنْ يَأْتِيَ أَهْلَهُ قَالَ: بِسْمِ الله، اللَّهُمَّ جَنِّبْنَا الشَّيطَانَ، وَجَنِّبِ الشَّيْطَانَ مَا رَزَقْتَنَا، فَقُضِيَ بَيْنَهُما وَلَدٌ فِي ذَلِكَ، لَمْ يَضُرَّهُ شَيْطَانٌ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1445- Ji kurê 'Ebbas (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Heger yek ji we çû cem jina xwe û bêje: 'Bi navê Xwedê. Xwedayo! Tu şeytan ji me û ji rizqê te dayî me dûr bixe,' û zarokekî wan çêbibe tu car şeytan nikare zerarê bide ewî zarokî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 Alî 'Îmran, 3/190-191.

## بَابُ مَا يَقُولهُ عِنْدَ نَوْمِهِ وَإِسْتِيقَاظِهِ

## DUAYÊ LI NIK RAZANÊ Û HIŞYARBÛNÊ

١٤٤٦- عَنْ حُذَيْفَةَ، وَأَبِي ذَرٍّ ﷺ قَالَا: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا أَوَى إِلَى فِرَاشِهِ قَالَ: (بِاسْمِكَ اللَّهُمَّ أَمُوتُ وأَحْيَا) وَإِذَا اسْتَيْقَظَ قَالَ: (الْحَمْدُ لِلهِ الَّذِي أَحْيَانَا بَعْدَ مَا أَمَاتَنَا وَإِلَيْهِ النُّشُورُ) رَوَاهُ البُخَارِي.

1446- Ji Huzeyfe ji Ebû Zerr (r.), gotin: Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) biketa nav nivîna xwe wiha dua dikir: "Xwedayo! Bi navê te ez dimrim û sax dibim." Û wextê hişyar bibûya jî wiha digot: "Hemd ji wî Xwedayê ku piştî me dimirîne me sax dike re ye. Û her vegerandin bi bal wî ve ye." *Buxarî riwayet kiriye.*

## بَابُ فَضْل حلق الذِّكْر

## FEZÎLETA XELEKÊ ZIKIR

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَاصْبِر نَفْسَكَ مَعَ الَّذِين يَدْعُونَ رَبَّهُمْ بِالْغَدَاةِ وَالعَشِيِّ يُرِيدُونَ وَجْهَهُ وَلَا تَعْدُ عَيْنَاكَ عَنْهُمْ﴾

"(Ey Muhemmed) tu sebra xwe li ser wan bikêşe û wan nehêle. Ewên sibeh û êvaran gazî Xwedayê xwe dikin (Xwedayê xwe diparêzin û bi parastin û gaziya xwe) qayîlbûn û razîbûna Xwedayê xwe dixwazin, tu berê xwe ji wan venegerîne."[1]

١٤٤٧- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ لِلَّهِ تَعَالَى مَلَائِكَةً يَطُوفُونَ فِي الطُّرُقِ يَلْتَمِسُونَ أَهْلَ الذِّكْرِ، فَإِذَا وَجَدُوا قَوْماً يَذكُرُونَ الله عَزَّ وَجَلَّ، تَنَادَوْا: هَلُمُّوا إِلَى حَاجَتِكُمْ، فَيَحُفُّونَهُمْ بِأَجْنِحَتِهِم إِلَى السَّمَاءِ الدُّنْيَا، فَيَسأَلهُم ربُّهُم- وَهُوَ أعْلَمَ-: مَا يَقُولُ عِبَادي؟ قَالَ: يَقُولُونَ: يُسَبِّحُونَكَ، وَيُكَبِّرُونَكَ، وَيَحْمِدُونَكَ، وَيَمُجِّدُونَكَ،

---

1 Kehf, 18/28.

فيَقُولُ: هَلْ رَأَوْنِي؟ فيَقُولُونَ: لَا وَاللَّهِ مَا رَأَوْكَ، فَيَقُولُ: كَيْفَ لَوْ رَأَوْنِي؟ قَالَ: يَقُولُونَ: لَوْ رَأَوْكَ كَانُوا أَشَدَّ لَكَ عِبَادَةً، وَأَشَدَ لَكَ تَمْجِيداً، وَأَكْثَرَ لَكَ تَسْبِيحاً، فَيَقُولُ: فَمَاذَا يَسْأَلُونَ؟ قَالَ: يَقُولُونَ: يَسْأَلُونَكَ الْجَنَّةَ، قَالَ: يَقُولُ: وَهَل رَأَوْهَا؟ قَالَ: يَقُولُونَ: لَا وَاللَّهِ يَا رَبِّ مَا رَأَوْهَا، قَالَ: يَقُولُ: فَكَيْفَ لَوْ رَأَوْهَا؟ قَالَ: يَقُولُونَ: لَوْ أَنَّهُمْ رَأَوْهَا كَانُوا أَشَدَ عَلَيْهَا حِرْصاً، وَأَشَدَّ لَهَا طَلَباً، وَأَعْظَمَ فِيهَا رَغْبَةً، قَالَ: فَمِمَّ يَتَعَوَّذُونَ؟ قَالَ: يَتَعَوَّذُونَ مِنَ النَّارِ؟ قَالَ: فَيقُولُ: وَهَلْ رَأَوْهَا؟ قَالَ: يَقُولُونَ: لَا وَاللَّهِ مَا رَأَوْهَا، فَيَقُولُ: كَيْفَ لَو رَأَوْهَا؟ قَالَ: يَقُولُونَ: لوْ رَأَوها كَانُوا أَشَدَّ مِنْهَا فِرَاراً، وَأَشَدَّ لَهَا مَخَافَةً، قَالَ: فَيَقُولُ: فَأُشْهِدُكُمْ أَنّي قَدْ غَفَرْتُ لَهُمْ، قَالَ: يَقُولُ مَلَكٌ مِنَ المَلَائِكَةِ: فِيهِم فُلَانٌ لَيْسَ مِنْهُم، إِنَّمَا جَاءَ لِحَاجَةٍ، قَالَ: هُمُ الجُلَسَاءُ لَا يَشْقَى بِهِمْ جَلِيسُهم) رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ: (إِنَّ لِلهِ مَلَائِكَةً سَيَّارَةً فُضُلاً يَتَتَبَّعُونَ مَجَالِسَ الذِّكْرِ، فَإِذَا وَجَدُوا مَجْلِساً فِيهِ ذِكْرٌ، قَعَدُوا مَعَهُم، وَحَفَّ بَعْضُهُمْ بَعْضاً بِأَجْنِحَتِهِمْ حَتَّى يَمْلَؤُوا مَا بَيْنَهُمْ وَبَيْنَ السَّمَاءِ الدُّنْيَا، فَإِذَا تَفَرَّقُوا عَرَجُوا وَصَعِدُوا إِلَى السَّمَاءِ، فيَسْأَلُهُمُ الله عَزَّ وَجَلَّ -وَهُوَ أَعْلَمُ-: مِنْ أَيْنَ جِئْتُمْ؟ فَيَقُولُونَ: جِئْنَا مِنْ عِنْدَ عِبَادٍ لَكَ فِي الأَرْضِ: يُسَبِّحُونَكَ، وَيُكَبِّرُونَكَ، وَيُهَلِّلُونَكَ، وَيَحْمَدُونَكَ، وَيَسْأَلُونَكَ، قَالَ: وَمَاذَا يَسْأَلُونِي؟ قَالُوا: يَسْأَلُونَكَ جَنَّتَكَ، قَالَ: وَهَلْ رَأَوْا جَنَّتِي؟ قَالُوا: لَا، أَيْ رَبِّ، قَالَ: فَكَيْفَ لَوْ رَأَوْا جَنَّتِي؟ قَالُوا: وَيَسْتَجِيرُونَكَ، قَالَ: وَمِمَّ يَسْتَجِيرُونِي؟ قَالُوا: مِنْ نَارِكَ يَا رَبِّ، قَالَ: وَهَلْ رَأَوْا نَارِي؟ قَالُوا: لَا، قَالَ: فَكَيْفَ لَوْ رَأَوْا نَارِي؟ قَالُوا: وَيَسْتَغْفِرُونَكَ، فَيَقُولُ: قَدْ غَفَرْتُ لَهُمْ، وَأَعْطَيْتُهُمْ مَا سَأَلُوا، وَأَجَرْتُهُمْ مِمَّا اسْتَجَارُوا، قَالَ: فَيَقُولُونَ: رَبِّ فِيهِمْ فُلَانٌ، عَبْدٌ خَطَّاءٌ، إِنَّمَا مَرَّ، فَجَلَسَ مَعَهُمْ، فيَقُولُ: وَلَهُ غَفَرْتُ، هُمُ القَوْمُ لا يَشْقَى بِهِمْ جَلِيسُهُمْ).

1447- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman hinek milyaketê Xwedê te'ala hene di rêya de li ehlê zikrê digerin. Vêca wextê ew milyaket civatek ji ehlê zikrê peyda dikin gazî hevdu dikin û ji hevdu re dibêjin: Werin werin, kesên ku hûn lê digerin li vir in. Vêca ew milyaket, bi baskê xwe heta asîmanê dunyayê, ehlê zikrê dorpêç dikin. Xwedê te'ala, di halê ku rewşa wan kesê ehlê zikrê ji milyaketan çêtir dizane jî, dîsa ji milyaketan pirsa ehlê zikrê dike û dibêje: "'Ebdê min çi dibêjin?" Milyaket jî dibêjin: Ew, te tesbîh, tekbîr, tehmîd û temcîd (bilindkirin û pesnidayin) dikin. Xwedê te'ala dibêje: "Ma wan ez dîtime?" Milyaket jî dibêjin: Naxêr, bi sond, wan tu nedîtine. Xwedê te'ala dibêje: "Heger wan ez bidîtama wê pirtir çawa bikirana?" Milyaket jî dibêjin: Heger wan tu bidîtana wê pirtir îbadetê te bikirana û wê pirtir tu temcîd û tesbîh bikirana. Xwedê te'ala dibêje: "Ew, çi daxwaz dikin?" Milyaket jî dibêjin: Ew daxwaza cennêtê ji te dikin. Xwedê te'ala dibêje: "Ma wan cennet dîtine?" Milyaket jî dibêjin: Naxêr, bi sond, ya Rebbî! Ewan cennet qet nedîtine. Xwedê te'ala dibêje: "Heger wan cennet dîtibûyana wê çi bikirana?" Milyaket jî dibêjin: Heger wan cennet bidîtana wê hirs û hewas û daxwaza wan li ser wê zêdetir û xurttir bibûya. Xwedê te'ala dibêje: "Ew, xwe ji çi diparêzin?"dibêje: Milyaket jî dibêjin: Xwe ji êgir diparêzin. Xwedê te'ala dibêje: "Ma wan agir dîtine?" Milyaket jî dibêjin: Naxêr, bi sond, wan agir qet nedîtine. Xwedê te'ala dibêje: "Heger wan agir dîtibûyana wê çi bikirana?" Milyaket jî dibêjin: Heger wan agir dîtibûyana wê zêdetir jê bireviyana û wê pirtir jê bitirsiyana. Vêca Xwedê te'ala dibêje: "Gelî milyaketan! Hûn govan û şahid bin ku min ew bexişandine." Milyaketek ji milyaketan jî dibêje: Lê di nav wan de filan kes jî heye, ne ji wan e. Ew ne ji bo zikrê, bes ji bo hewceyekê hatibû nav wan. Xwedê te'ala jî dibêje: "Ew însanê wisa kamil û gihîştî ne, kesê digel wan rûniştî jî xerab nabe." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

Di senedeke Muslim de: Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Bêguman hinek milyaketên Xwedê te'ala gerok hene li civatê zikrê digerin. Vêca ew milyaket wextê civateke ku tê de zikir tê kirin dibînin digel wan rûdinin, hinek ji wan hinekî dorpêç dikin heta navbera wan ehlê zikrê û asîmanê dunyayê tijî dikin. Wextê ehlê zikrê ji hevdu vediqetin, milyaket bilind dibin û diçine asîmana. Vêca Xwedê 'ezze we celle, di halê ku ji milyaketan çêtir dizane jî, dîsa ji wan dipirse: "Hûn ji kuderê tên?" Milyaket jî dibêjin: Em ji cem 'ebdê te yê li ser rûyê erdê tên ku ew te tesbîh, tekbîr, tehlîl, tehmîd û daxwazê ji te dikin. Xwedê te'ala dibêje: "Ew, ji

min çi dixwazin? Milyaket jî dibêjin: Ew cenneta te ji te dixwazin. Xwedê te'ala dibêje: "Ma wan cenneta min dîtine?" Milyaket jî dibêjin: Naxêr, ya Rebbî. Xwedê te'ala dibêje: "Heger wan cenneta min dîtibûyana wê çi bikirana?" Milyaket dibêjin: Wê xwe bispartana te. Xwedê te'ala dibêje: "Wê ji çi xwe bispartana min?" Milyaket dibêjin: Ji agirê te, ya Rebbî. Xwedê te'ala dibêje: "Ma wan agirê min dîtine?" Milyaket dibêjin: Naxêr. Xwedê te'ala dibêje: "Eger wan agirê min dîtibûyana wê çi bikirana?" Milyaket dibêjin: Wê daxwaza bexişandinê ji te bikirana. Vêca Xwedê te'ala dibêje: "Min ew bexişandin, daxwaza wan min da wan û min ew parastin ji tiştê ku xwe jê diparêzin." Milyaket jî dibêjin: Lê di nav wan de filan 'ebdê gunehkar heye, bes ew di wê derê re derbas dibû vêca digel rûnişt. Xwedê te'ala jî dibêje: "Min ew jî bexişand, ew civateke wisa ye kesê digel wan rûniştî jî xerab nabe."

١٤٤٨- وَعَنْهُ، وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ ﷺ قَالَا: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (لَا يَقْعُدُ قَوْمٌ يَذْكُرُونَ الله عَزَّ وَجَلَّ إِلَّا حَفَّتْهُمُ المَلَائِكَةُ، وَغَشِيَتْهُمُ الرَّحْمَةُ وَنَزَلَتْ عَلَيْهِمُ السَّكِينَةُ، وَذَكَرَهُمُ الله فِيمَنْ عِنْدَهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1448- Ji Ebû Hureyre û ji Ebû Se'îd (r.), gotin: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ew qewmê ku rûnin zikrê Xwedê te'ala bikin milyaket wan dorpêç bikin, rehmeta Xwedê û sekîneta wî wê birêje li ser wan û Xwedê di nav wan kesên li bal xwe de jî wê behsa wan bike." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٤٩- وَعَنْ أَبِي وَاقِدٍ الْحَارِثِ بْنِ عَوْفٍ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ بَيْنَمَا هُوَ جَالِسٌ فِي المَسْجِدِ، وَالنَّاسُ مَعَهُ، إِذْ أَقْبَلَ ثَلَاثَةُ نَفَرٍ، فَأَقْبَلَ اثْنَانِ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَذَهَبَ وَاحِدٌ، فَوَقَفَا عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَأَمَّا أَحَدُهُما فَرَأى فُرجَةً فِي الْحَلْقَةِ، فَجَلَسَ فِيهَا وأَمَّا الآخرُ، فَجَلَسَ خَلْفَهُم، وَأَمَّا الثَّالِثُ فَأَدبَرَ ذَاهِباً، فَلَمَّا فَرَغَ رَسُولُ الله ﷺ (قَالَ أَلَا أُخْبِرُكُمْ عَن النَّفَرِ الثَّلَاثَةِ؟ أَمَّا أَحَدُهُمْ، فَأَوى إِلَى اللَّهِ، فآوَاهُ الله إِلَيْهِ، وَأَمَّا الآخَرُ فَاسْتَحْيَا فَاسْتَحْيَا الله مِنْهُ، وَأَمَّا الآخَر، فَأَعْرَضَ، فَأَعْرَضَ الله عَنْهُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1449- Ji Ebû Waqid Harisê kurê 'Ewf (r.) hatiye rîwayetkirin ku

  

Pêxemberê Xwedê (s.) wextê di mizgeftê de bû û însan jî li dora wî bûn sê mirov hatin. Ji wan sê mirovan du heban berê xwe dane Pêxemberê Xwedê (s.), hatin cem wî û yê din jî derket û çû. Ew her du hatin li pêşberî Pêxemberê Xwedê (s.) rawestiyan; vêca yek ji wan di xelekê de cîhekî vala dît û li wir rûnişt û yê din jî li pişt xelekê rûnişt. Lê yê sêyem jî pişta xwe da û çû. Vêca wextê Pêxemberê Xwedê (s.) ji we'z û şîretê vala bû got: "Ez ji we re agahiya van her sê mirovan bidim? Yek ji wan her sêyan xwe sparte Xwedê, Xwedê jî ew stirand, yekî jî şerm kir Xwedê jî ji wî şerm kir (ew bexişand) û yê din jî rû bada, Xwedê jî ji wî rû bada." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٤٥٠- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ قَالَ: خرَجَ مُعَاوِيَةُ ﷺ عَلَى حَلْقَةٍ فِي الْمَسْجِدِ، فَقَالَ: مَا أَجْلَسَكُمْ؟ قَالُوا: جَلَسْنَا نَذْكُرُ الله، قَالَ: آلله ما أَجْلَسَكُمْ إِلَّا ذَاكَ؟ قَالُوا: مَا أَجْلَسَنَا إِلَّا ذَاكَ، قَالَ: أَمَا إِنِّي لَمْ أَسْتَحْلِفْكُمْ تُهْمَةً لَكُمْ، وَمَا كَانَ أَحَدٌ بِمَنْزِلَتِي مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَقَلَّ عَنْهُ حَدِيثاً مِنِّي: إِنَّ رَسُولَ الله ﷺ خَرَجَ عَلَى حَلْقَةٍ مِنْ أَصْحَابِهِ فَقَالَ: (مَا أَجْلَسَكُمْ؟) قَالُوا: جَلَسْنَا نَذْكُرُ الله، وَنَحْمَدُهُ عَلَى مَا هَدَانَا لِلإِسْلَامِ، وَمَنَّ بِهِ عَلَيْنَا، قَالَ: (الله، مَا أَجْلَسَكُمْ إِلَّا ذَاكَ؟) قَالُوا: وَاللَّهِ مَا أَجْلَسَنَا إِلَّا ذَاكَ. قَالَ: (أَمَا إِنِّي لَمْ أَسْتَحْلِفْكُمْ تُهْمَة لَكُمْ، وَلَكِنَّهُ أَتَانِي جِبْرِيلُ فَأَخْبَرَنِي أَنَّ الله يُبَاهِي بِكُمُ الْمَلَائِكَةَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1450- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), got: Muawiye (r.) hate mizgeftê û rastî xelaka zikrê hat û vêca got: Hûn ji bo çi rûniştine? Ewan gotin: Em, bes ji bo vî (zikrê Xwedê) rûniştine. Mu'awiye got: Hûn bi Xwedê kin bi rastî hûn bes ji bo vê yekê kom bûne? Ewan gotin: Em, bes ji bo vêya kom bûne. Îcar Mu'awiye got: Min hûn dane sondê ne ku ji bo ez ji we bawer nakim. Li cem Pêxemberê Xwedê (s.) tu kesekî ji hêla (rîwayetkirina) hedîsan, dereceya wî ji ya min kêmtir be tune bû: Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) rastî xelaka zikrê eshabê xwe hat û got: "Hûn ji bo çi rûniştine? Ewan gotin: Em rûniştine ku em zikrê Xwedê bikin û bi sedem ku em raste rê kiriye ji bo Îslamê û bi Îslamê minet li me kiriye em hemdê wî bikin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Hûn bi Xwedê kin bi rastî hûn bes ji bo vê yekê kom bûne?" Ewan gotin: Bi sond, em bes ji bo vêya kom bûne. Îcar Pêxemberê

Xwedê (s.) got: "Min hûn dane sondê ne ku ji bo ez ji we bawer nakim. Lê Cibrîl hate bal min û agahî da min ku; Xweda te'ala hemberî milyaketan bi we îftixar û şanazî dike." *Muslim riwayet kiriye.*

## بَابُ الذِّكْر عِنْدَ الصَّبَاحِ وَالْمَسَاءِ

## ZIKRÊ XWEDÊ SIBEH Û ÊVARAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَاذْكُرْ رَبَّكَ فِي نَفْسِكَ تَضَرُّعاً وَخِيفَةً وَدُونَ الْجَهْرِ مِنَ الْقَوْلِ بِالْغُدُوِّ وَالآصَالِ وَلَا تَكُنْ مِنَ الْغَافِلِينَ﴾

"Rebbê xwe bi tirs û zelûlî û bi dengek sivik (navbera dengê nizm û bilind de) di dilê xwe sibeh û êvaran bîne bîra xwe û nebe ji xafilan." [1]

﴿وَسَبِّحْ بِحَمْدِ رَبِّكَ قَبْلَ طُلُوعِ الشَّمْسِ وَقَبْلَ غُرُوبِهَا﴾

"Berî rojhilatin û rojavabûnê Rebbê xwe pak û paqij bidêre û hemdê wî bike."[2]

﴿وَسَبِّحْ بِحَمْدِ رَبِّكَ بِالْعَشِيِّ وَالإِبْكَارِ﴾

"Sibeh û êvaran (yan hemû deman) tesbîh û hemdê Rebbê xwe bikî."[3]

﴿فِي بِيُوتٍ أَذِنَ الله أَنْ تُرْفَعَ وَيُذْكَرَ فِيهَا اسْمُهُ يُسَبِّحُ لَهُ فِيهَا بِالْغُدُوِّ والآصَالِ ۞ رِجَالٌ لَا تُلْهِيهِمْ تِجَارَةٌ وَلَا بَيْعٌ عَنْ ذِكْرِ اللَّهِ﴾

"(ew ronahî) di mizgeftan de ye, ew mizgeftê Xwedê emirkirî ku bilind bêne ava kirin, qedr û rêz bo wan bêne girtin, ayetê Xwedê tê de bêne xwendin, zikrê wî tê de bê kirin û sibeh û êvaran (yan her pênc wextan) nimêj tê de bêne kirin. (Evan xaniyan yan mizgeftan) hinek zilamê tê de, bazirganî û kirrîn û firotin wan ji zikr û bîranîna Xwedê, kirina nimêjan û dana zikatê (bêagah û mijûl) nakin."[4]

إِنَّا سَخَّرْنَا الْجِبَالَ مَعَهُ يُسَبِّحْنَ بِالْعَشِيِّ وَالإِشْرَاقِ﴾

"Me ji bo Dawûd çiya sernerm kiribûn. Ew digel Dawûd di sibeh û

1 E'raf, 7/205.
2 Taha, 20/130.
3 Xafir, 40/55
4 Nûr, 24/36-37.

  

êvaran de Xwedê ji kêmasiyan paqij bikin."[1]

١٤٥١- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ قَالَ حِينَ يُصْبِحُ وَحِينَ يُمْسي: سُبْحَانَ اللَّهِ وَبِحَمْدِهِ مِائَةَ مَرَّةٍ، لَمْ يَأْتِ أَحَدٌ يَوْمَ الْقِيَامَةِ بِأَفضَلَ مِمَّا جَاءَ بِهِ، إِلَّا أَحَدٌ قالَ مِثْلَ مَا قَالَ أَوْ زَادَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1451- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê sibeh û êvaran sed carî; *subhanellahî we bîhemdîhî* bêje di roja qiyametê de kesekî ji wî xêrtir nayê, ji bil wî kesê wekî gotina wî gotibe yan jî ji wî zêdetir gotî be." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٥٢- وَعَنْهُ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، مَا لَقِيتُ مِنْ عَقْرَبٍ لَدَغَتْنِي الْبَارِحَةَ، قَالَ: (أَمَا لَوْ قُلْتَ حِينَ أَمْسَيتَ: أَعُوذُ بِكَلِمَاتِ الله التَّامَّاتِ مِنْ شَرِّ مَا خَلَقَ لَمْ تَضُرَّكَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1452- Dîsa ji wî (r.), got: Mirovek hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û got: Ya Pêxemberê Xwedê! Min çi kişand ji dûpişka ku şeva berê bi min veda! Pêxemberê Xwedê (s.) got: Lê eger te êvarê: 'Ez bi gotinên Xwedê yên tam (bi Qur'ana pîroz) xwe ji tiştê Xweda afirandiye diparêzim,' bigota wê dûpişkê tu zerar nedaba te." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٥٣- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهُ كَانَ يَقُولُ إِذَا أَصْبَحَ: (اللَّهُمَّ بِكَ أَصْبَحْنَا، وَبِكَ أَمْسَيْنَا، وَبِكَ نَحْيَا، وَبِكَ نَمُوتُ، وَإِلَيْكَ النُّشُور) وَإِذَا أَمْسَى قَالَ: (اللَّهُمَّ بِكَ أَمْسَيْنَا، وَبِكَ نَحْيَا، وَبِكَ نَمُوتُ، وَإِلَيْكَ الْمَصِيرُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1453- Dîsa ji wî (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) ku lê dibû sibeh digot: "Xwedayo! Bi arîkariya te em ketin sibehê û bi arîkariya te em ketin êvarê. Û bi te em sax di bin û bi te em dimrin." Wextê lê dibû êvar jî wiha digot: "Xwedayo! Bi arîkariya te em gihîştine êvarê, bi arîkariya te emê sax bibin û bimrin. Û her bi bal te ve ye veger." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

١٤٥٤- وَعَنْهُ أَنَّ أَبَا بَكْرٍ الصِّدِّيقَ ﷺ قَالَ: يَا رَسُولَ اللهْ مُرنِي بِكَلِمَاتٍ أَقُولُهُنَّ إِذَا

1 Sad, 38/18.

أَصْبَحْتُ وَإِذَا أَمْسَيتُ، قَالَ: قُلْ: (اللَّهُمَّ فَاطِرَ السَّمَاوَاتِ وَالأَرْضِ عَالِمَ الغَيْبِ وَالشَّهَادَةِ، رَبَّ كُلِّ شَيْءٍ وَمَلِيكَهُ، أَشهَدُ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا أَنْتَ، أَعُوذُ بِكَ مِنْ شَرِّ نَفْسِي وَشَرِّ الشَّيْطَانِ وَشِرْكِهِ) قَالَ: (قُلْهَا إِذَا أَصْبَحْتَ، وَإِذَا أَمْسَيْتَ، وَإِذَا أَخذْتَ مَضْجَعَكَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1454- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Ebû Bekirê Siddîq (r.) gotiye: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu hinek duayê ku ez di wextê sibeh û êvaran de bixwînim, hînî min bike. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Tu bêjî: ey Xwedayê ku tu aferîndêrê asîmanan û erdê, zanyarê xeyb û şehadetê, Rebbê hemû tişta û xwediyê wan î; ez şehdê didim ku ji xeynê te tu Xwedê tune û ez xwe dispêrime te ji xerabiya nefsa xwe, ji xerabiya şeytan û şîrka wî.” Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Tu van gotina sibeh û êvaran û yek jî wextê te xwe dirêj kir bêje.” *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١٤٥٥- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: كَانَ نَبِيُّ اللَّهِ ﷺ إِذَا أَمْسَى قَالَ: (أَمْسَيْنَا وَأَمْسَى الْمُلْكُ لِلهِ، وَالْحَمْدُ لِلهِ، لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَحْدَهُ لَا شَرِيكَ لَهُ) قَالَ الرَّاوِي: أُرَاهُ قَالَ فِيهِنَّ: (لَهُ الْمُلْكُ وَلَهُ الْحَمْدُ وَهُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ، رَبِّ أَسْأَلُكَ خَيْرَ مَا فِي هَذِهِ اللَّيْلَةِ، وَخَيْرَ مَا بَعْدَهَا، وَأَعُوذُ بِكَ مِنْ شَرِّ مَا فِي هذِهِ اللَّيْلَةِ وَشَرِّ مَا بَعْدَهَا، رَبِّ أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْكَسَلِ، وَسُوءِ الْكِبَرِ، رَبِّ أَعُوذُ بِكَ مِنْ عَذَابٍ فِي النَّارِ، وَعَذَابٍ فِي الْقَبْرِ) وَإِذَا أَصْبَحَ قَالَ ذَلِكَ أَيْضاً: (أَصْبَحْنَا وَأَصْبَحَ الْمُلْكُ لِلهِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1455- Ji kurê Mes‘ûd (r.), got: Pêxember (s.) wextê dikete êvarê wiha digot: “Em gihîştine êvarê û mulk jî her yê Xwedê ye, hemd her ji Xwedê re ye, ji xeynê Xwedê tu îlah tune, ew bi tenê ye û hemtayê wî jî tune.” Rawî dibêje: Ez dibêjim qey ewî (s.) wiha jî digot: “Mulk her yê wî (c.c.) ye, hemd her yê wî ye û ew li ser her tiştî şiyandar e. Rebbê min, ez xêra vê şevê û şeva pey vê ji te dixwazim. Û ez ji xerabiyê vê şevê û şeva pey vê xwe dispêrime te. Rebbê min, ez xwe dispêrime te ji tiraliyê û ji xurifandinê. Rebbê min, ez dîsa xwe dispêrime te ji ‘ezabê cehennemê û ji ‘ezabê gorê.” Wextê dibû sibeh jî dîsa ev gotin digot, lê (di şûna peyvika êvarê de) wiha digot: “Em gihîştine sibehê û mulk jî bidom yê Xwedê ye.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٥٦- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ خُبَيْبٍ ﷺ قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: أَقْرَأْ: (قُلْ هُوَ اللَّهُ أَحَدٌ) وَالْمُعَوِّذَتَيْنِ حِينَ تُمْسِي وَحِينَ تُصْبِحُ، ثَلَاثَ مَرَّاتٍ تَكْفِيكَ مِنْ كُلِّ شَيْءٍ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1456- Ji ‘Ebdullahê kurê Xubeyb (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: “Tu di sibeh û êvaran de, ‘Qul hûwellahu ehedê û her du sûretên Mu‘ewwîzeteyn (Feleq û Nas) sê caran bixwînî wê besî te be ji ber her tiştî ve.” *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١٤٥٧- وَعَنْ عُثْمَانَ بْنِ عَفَّانَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا مِنْ عَبْدٍ يَقُولُ فِي صَبَاحِ كُلِّ يَوْمٍ وَمَسَاءِ كُلِّ لَيْلَةٍ: بِسْمِ اللَّهِ الَّذِي لَا يَضُرُّ مَعَ اسْمِهِ شَيْءٌ فِي الأَرْضِ وَلَا فِي السَّمَاءِ وَهُوَ السَّمِيعُ الْعَلِيمُ، ثَلَاثَ مَرَّاتٍ، إِلَّا لَمْ يَضُرَّهُ شَيءٌ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1457- Ji Osmanê kurê ‘Effan (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê ku di sibeha her rojê û di êvara her şevê de sê caran vê duayê: Bi navê wî Xwedayê ku bi hurmeta navê wî tu tiştek di erd û asîmanan de zerarê nade. Û ew guhdar û zana ye.” Bêje tiştek zerarê nade wî. *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

## بَابُ مَا يَقُولهُ عِنْدَ النَّوْم
## DUAYÊ KU TÊ XWENDIN LI NIK RAZANÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿إِنَّ فِي خَلْقِ السَّمَاوَاتِ وَالأَرْضِ وَاخْتِلَافِ اللَّيْلِ وَالنَّهَارِ لآيَاتٍ لأُولِي الأَلْبَابِ ۝ الَّذِينَ يَذْكُرونَ الله قِيَاماً وَقُعُوداً وَعَلَى جُنُوبِهِمْ وَيَتَفَكَّرُونَ فِي خَلْقِ السَّمَاوَاتِ وَالأَرْضِ رَبَّنَا مَا خَلَقْتَ هذَا بَاطِلاً سُبْحَانَكَ فَقِنَا عَذَابَ النَّارِ﴾

“Bi rastî di çêkirina erd û asîmanan de, di quherîna şev û rojan de ayet û nîşan hene ji bo kesê jîr û aqildar. (Kesê jîr û aqildar) ewê rawestiyayî (li ser piya), rûniştî û li ser teniştê (kêlekê) dirêjkirî Xweda tînine bîra xwe û zikrê wî dikin. Hizra xwe di çêkirina erd û asîmanan de dikin, (û

dibêjin:) Xwedayo! (Ev cîhan) te bi pûçî çênekiriye. Pakî û bêqusûrî, her ji bo te ye. Êdî tu me ji 'ezabê êgir biparêzî."[1]

١٤٥٨- وَعَنْ حُذَيْفَةَ وَأَبِي ذَرٍّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ (كَانَ إِذَا أَوَى إِلَى فِرَاشِهِ قَالَ: بِاسْمِكَ اللَّهُمَّ أَحْيَا وَأَمُوتُ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1458- Ji Huzeyfe û ji Ebû Zerr (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wextê xwe li cihê xwe dirêj dikir wiha digot: Xwedayo! Bi arîkariya navê te ez sax dibim û dimrim." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٤٥٩- وَعَنْ عَلِيٍّ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ لَهُ وَلِفَاطِمَةَ ﷺ: (إِذَا أَوَيْتُمَا إِلَى فِرَاشِكُمَا، أَوْ إِذَا أَخَذْتُمَا مَضَاجِعَكُمَا، فَكَبِّرَا ثَلَاثاً وثَلَاثِينَ، وَسَبِّحَا ثَلَاثاً وَثَلَاثِينَ، وَأَحْمَدَا ثَلَاثاً وثَلَاثِينَ).

وَفِي رِوَايَةٍ: (التَّسْبِيحُ أَرْبَعاً وَثَلَاثِينَ) وَفِي رِوَايَةٍ: (التَّكْبِيرُ أَرْبَعاً وَثَلَاثِينَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1459- Ji 'Eliyê kurê Ebû Talib (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) ji wî û ji Fatimê (r.) re got: Wextê hûn ketine nav nivînên xwe; sî û sê caran tekbîr, sî û sê caran tesbîh û sî û sê caran jî tehmîd bêjin."

Di senedakê de: Sî û çar caran tesbîh.

Di senedekê de jî: Sî û çar caran tekbîr. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٤٦٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا أَوَى أَحَدُكُم إِلَى فِرَاشِهِ، فَلْيَنْفُضْ فِرَاشَهُ بِدَاخِلَةِ إِزَارِهِ فإِنَّهُ لَا يَدْرِي مَا خَلَفَهُ عَلَيْهِ، ثُمَّ يَقُولُ: بِاسْمِكَ رَبِي وَضَعْتُ جَنْبِي، وَبِكَ أَرْفَعُهُ، إِنْ أَمْسَكْتَ نَفْسِي فَارْحَمْهَا، وَإِنْ أَرْسَلْتَهَا، فَاحْفَظْهَا بِمَا تَحْفَظُ بِهِ عِبَادَكَ الصَّالِحِينَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1460- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Wextê yek ji we çû ser nivînen xwe bila bi hundirê kirasê xwe cihê xwe daweşîne, lewra ew nizane piştî wî li ser cihê wî çi maye. Û paşê jî bila ew bêje: Bi navê te min kêleka xwe li ser cihê xwe danî û ezê dîsa bi navê te rakim. Vêca eger te ruhê min kişand tu rehmê lê bikî û eger te ruhê min nekişand

1 Alî 'Îmran, 3/190-191.

û sax hişt tu wî biparêzî bi wî tiştê ku tu bendeyê xwe yên pak û qenc diparêzî.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٤٦١- وَعَنْ عَائِشَةَ، ، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ إِذَا أَخَذَ مَضْجَعَهُ نَفَثَ فِي يَدَيْهِ، وَقَرَأَ بِالْمُعَوِّذَاتِ وَمَسَحَ بِهِمَا جَسَدَهُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُمَا: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ إِذَا أَوَى إِلَى فِرَاشِهِ كُلَّ لَيْلَةٍ جَمَعَ كَفَّيْهِ، ثُمَّ نَفَثَ فِيهِمَا فَقَرَأَ فِيهِمَا: (قُلْ هُوَ اللهُ أَحَدٌ) وَ(قُلْ أَعُوذُ بِرَبِّ الفَلَقِ) وَ(قُلْ أَعُوذُ بِرَبِّ النَّاسِ) ثُمَّ مَسَحَ بِهِمَا مَا اسْتَطَاعَ مِن جَسَدِهِ، يَبْدَأُ بِهِمَا عَلَى رَأْسِهِ وَوَجْهِهِ، وَمَا أَقبَلَ مِنْ جَسَدِهِ، يَفْعَلُ ذلِكَ ثَلَاثَ مَرَّاتٍ.

1461- Ji ‘Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wextê wê biketa nav nivînê xwe, her du sûretên Mu‘ewwizeteyn (Feleq û Nas) dixwend, pifî kefa her du destê xwe dikir û bedena xwe pê mist dida. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di senedeke Muslim û Buxarî de: Bêguman Pêxember (s.) wextê bihata ser nivînê xwe her şev kefa her du destê xwe kom dikir, paşê pif dikire wan û di wan de; *qul huwel-lahû ehed,’ ‘qul e‘ûzû bîrebbîl-feleq’ û ‘qul e‘ûzû bîrebbîn-nas* dixwend. Paşê jî bi her du kefê xwe hingî bikariya cesedê xwe mist dida, lê bi ser, rû û pêşya bedena xwe dest pê dikir, ev yeka sê caran dikir.

١٤٦٢- وَعَنِ الْبَرَاءِ بْنِ عَازِبٍ  قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا أَتَيْتَ مَضْجَعَكَ فَتَوَضَّأْ وضُوءَكَ لِلصَّلَاةِ، ثُمَّ اضطَجعْ عَلَى شِقِّكَ الأَيْمَنِ، وَقُلْ: اللَّهُمَّ أَسْلَمْتُ نَفْسِي إِلَيْكَ، وَفَوَّضْتُ أَمْرِي إِلَيْكَ، وَأَلْجأْتُ ظَهْرِي إِلَيْكَ، رَغبَةً وَرَهْبَةً إِلَيْكَ، لَا مَلْجأَ وَلَا مَنْجَا مِنْكَ إِلَّا إِلَيْكَ، آمَنْتُ بِكِتَابِكَ الَّذِي أَنْزَلْتَ، وَبِنَبِيِّكَ الَّذِي أَرْسَلْتَ، فَإِنْ مِتَّ، مِتَّ عَلَى الْفِطْرَةِ، وَاجْعَلهُنَّ آخِرَ مَا تَقُولُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1462- Ji Berayê kurê ‘Azib (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: “Wextê tu çûyî ser cihê xwe wekî destnimêja nimêjê, destnimêj bigre, paşê xwe li ser kêleka rastê dirêj bike û bêje: ‘Xwedê! Min nefsa xwe radest/

teslimî te kir, karê xwe sparte te, pişta xwe ji ber hêvî û tirsa te penaberê te kir, ji xeynê bal te tu êwergeh û penahgeh tune, min bawer kiriye bi wê kitêba ku te nazil kiriye û bi wî pêxemberê ku te şandiye.' Vêca eger tu wê şevê bimrî tu dê li ser fitretê bimrî û tu dê van gotinan bixî dûmayîka gotinên xwe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٤٦٣- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ إِذَا أَوَى إِلَى فِرَاشِهِ قَالَ: (الْحَمْدُ لِلهِ الَّذِي أَطْعَمَنَا وَسَقَانَا، وَكَفَانَا وَآوَانَا، فَكَمْ مِمَّنْ لَا كَافِيَ لَهُ وَلَا مُؤْوِيَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1463- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) wextê biçûya ser cihê xwe wiha digot: "Hemd ji wî Xwedayî re be ku em dane xwarin û vexwarinê, em stirandine û em xwedî cih kirine. Gelek mirov hene ne parêzgerê û ne jî stargerê wan hene." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٦٤- وَعَنْ حُذَيْفَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ إِذَا أَرَادَ أَنْ يَرْقُدَ، وَضَعَ يَدَهُ الْيُمْنَى تَحْتَ خَدِّهِ، ثُمَّ يَقُولُ: (اللَّهُمَّ قِنِي عَذَابَكَ يَوْمَ تَبْعَثُ عِبَادَكَ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ، وَرَوَاهُ أَبُو دَاوودَ مِنْ رِوَايَةِ حَفْصَةَ ﷺ وَفِيهِ أَنَّهُ كَانَ يَقُولُهُ ثَلَاثَ مَرَّاتٍ.

1464- Ji Huzeyfe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wextê bixwesta ku razê destê xwe yê rastê dixiste bin lama xwe de û paşê jî wiha digot: "Xwedayo! Tu min ji 'ezabê xwe biparêzî di wê roja ku tu bendeyê xwe vedijînî û wan dişînî mehşerê." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

Ebû Dawûd ji seneda Hefseyê (r.) rîwayet kiriye ku Pêxemberê Xwedê (s.) ev dua sê caran tekrar dikir.

# كِتَاب الدُّعَاء
# KITÊBA DUA

## بَابُ فَضْلِ الدُّعاء
## FEZÎLETA DUA

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَقَالَ رَبُّكُمُ ادْعُونِي أَسْتَجِبْ لَكُمْ﴾

"Xwedayê we got: Gazî min bikin ezê bersîva we bidim."[1]

﴿أُدْعُوا رَبَّكُمْ تَضَرُّعاً وَخُفْيَةً إِنَّهُ لَا يُحِبُّ الْمُعْتَدِينَ﴾

"Hûn xwe bi zarîn û bi tirs dua ji Xwedayê xwe bikin. Bi rastî Xweda, ji hed-derbasiyê hez nake."[2]

﴿وَإِذَا سَأَلَكَ عِبَادِي عَنِّي فَإِنِّي قَرِيبٌ أُجِيبُ دَعْوَةَ الدَّاعِ إِذَا دَعَانِ﴾

"Eger 'ebdên min pirsa min ji te kirin, bêguman ez nêzîk im. Yê gazî min bike ezê herime hewara wî û bersîva gaziya wî bidim."[3]

﴿أَمَّنْ يُجِيبُ الْمُضْطَرَّ إِذَا دَعَاهُ وَيَكْشِفُ السُّوءَ﴾

"(Ewê we ji bo Xwedê kirine hevbeş çêtir in) û yan jî ewê ku bersiva

1 Xafir, 40/60.
2 E'raf, 7/55.
3 Beqere, 2/186.

tengavî dide wextê hewarê jê dixwaze û nexweşiyê radike çêtir e."[1]

١٤٦٦- وَعَنِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (الدُّعَاءُ هُوَ الْعِبَادَةُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1466- Ji Nu'manê kurê Beşîr (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Dua, îbadet bi xwe ye." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

١٤٦٧- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَسْتَحِبُّ الْجَوَامِعَ مِنَ الدُّعَاءِ، وَيَدَعُ مَا سِوَى ذَلِكَ. رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ جَيِّدٍ.

1467-Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji duayê kurt pir bi me'ne hez dikir û xeynê wan jî diterikand. *Ebû Dawûd bi senedeke ceyîd rîwayet kiriye.*

١٤٦٨- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: كَانَ أَكْثَرُ دُعَاءِ النَّبِيِّ ﷺ: (اللَّهُمَّ آتِنَا فِي الدُّنْيَا حَسَنَةً وَفِي الآخِرَةِ حَسَنَةً وَقِنَا عَذَابَ النَّارِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

زَادَ مُسْلِمٌ فِي رِوَايَتِهِ قَالَ: وَكَانَ أَنَسٌ إِذَا أَرَادَ أَنْ يَدْعُوَ بِدَعْوَةٍ دَعَا بِهَا، وَإِذَا أَرَادَ أَنْ يَدْعُوَ بِدُعَاءٍ دَعَا بِهَا فِيهِ.

1468-Ji Enes (r.), got: Zehftirê duayê Pêxember (s.); *"Xwedayo! Tu di dunyayê de qenciyê digel me bike û di axîretê de qenciyê digel me bike. Û me ji ezab û nexweşiya agirê cehennemê biparêze."* [2] *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Muslim di seneda xwe de ev zêde kiriye: Wextê (rawiyê hedîsê) Enes bixwesta ku daxwaziyekê bike bi vî duayî dua dikir. Û wextê bixwesta ku dua bike bi vî duayî dua dikir.

١٤٦٩- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يَقُولُ: (اللَّهُمَّ إِنِّي أَسْأَلُكَ الْهُدَى، وَالتُّقَى، وَالْعَفَافَ، وَالْغِنَى). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1469- Ji kurê Mes'ûd (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) wiha dua dikir: "Xwedayê min! Ez ji te daxwaza hîdayetê, teqwayê, 'îffetê –dûrbûna

1 Neml, 27/62.

2 Beqere: 1/201.

ji tiştê te heram kirî– û dewlemendiyê dikim." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٧٠- وَعَنْ طَارِقِ بْنِ أَشْيَمَ ﷺ قَالَ: كَانَ الرَّجُلُ إِذَا أَسْلَمَ عَلَّمَهُ النَّبِيُّ ﷺ الصَّلاةَ، ثُمَّ أَمَرَهُ أَنْ يَدْعُوَ بِهَؤُلَاءِ الْكَلِمَاتِ: اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي، وَارْحَمْنِي، وَاهْدِنِي، وَعَافِنِي، وَارْزُقْنِي. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ عَنْ طَارِقٍ: أَنَّهُ سَمِعَ النَّبِيَّ ﷺ وَأَتَاهُ رَجُلٌ، فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، كَيْفَ أَقُولُ حِينَ أَسْأَلُ رَبِّي؟ قَالَ: قُلْ: (اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي، وَارْحَمْنِي، وَعَافِنِي، وَارْزُقْنِي، فَإِنَّ هَؤُلَاءِ تَجْمَعُ لَكَ دُنْيَاكَ وَ آخِرَتَكَ).

1470- Ji Tariqê kurê Eşyem (r.), got: Wextê mirovek misilman dibû, Pêxember (s.) nimêj hînî wî dikir û paşê jî emrê wî dikir ku bi van gotinan dua bike: "Xwedayo! Tu min bibexşînî, rehmê li min bikî, min rasterê bikî, noşîcaniyê bidî min û min xwedîrizq bikî." *Muslim rîwayet kiriye.*

Di senedeke Muslim ji Tariq: Bêguman Tariq ji Pêxember (s.) bihîst ku mirovek hate bal û got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ezê çi bêjim wextê ez ji Rebbê xwe daxwaza tiştekî bikim? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu bêjî: 'Xwedê! Tu min bibexşînî, rehmê li min bikî, min rasterê bikî, noşîcaniyê bidî min û min xwedîrizq bikî.' Lewra ev gotinên hanê dunya û axîreta te her dukan ji te re kom dike."

١٤٧١- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (اللَّهُمَّ مُصَرِّفَ الْقُلُوبِ صَرِّفْ قُلُوبَنَا عَلَى طَاعَتِكَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1471- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedayê me yê ku tu qelb û dila vedigerînî! Tu dilê me jî vegerîne li ser ta'et û îbadetê xwe." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٧٢- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (تَعَوَّذُوا بِاللَّهِ مِنْ جَهْدِ الْبَلَاءِ، وَدَرَكِ الشَّقَاءِ، وَسُوءِ الْقَضَاءِ، وَشَمَاتَةِ الأَعْدَاءِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1472- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Hûn ji belaya dij-

war, ji ragihîştina zehmetî û dûmayîka xerab û ji şabûna dijminan xwe biparêzine Xwedê te'ala." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٤٧٣- وَعَنْهُ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (اللَّهُمَّ أَصْلِحْ لِي دِينِي الَّذِي هُوَ عِصْمَةُ أَمْرِي، وَأَصْلِحْ لِي دُنْيَايَ الَّتِي فِيهَا مَعَاشِي، وَأَصْلِحْ لِي آخِرَتِي الَّتِي فِيهَا مَعَادِي، وَاجْعَلِ الْحَيَاةَ زِيَادَةً لِي فِي كُلِّ خَيْرٍ، وَاجْعَلِ الْمَوْتَ رَاحَةً لِي مِنْ كُلِّ شَرٍّ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1473- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wiha dua dikir: "Xwedayo! Tu biselihînî û perwerde bikî dînê min yê ku kar û kiryarê min diparêze, dunya min ya ku jîna min tê de ye û axîreta min ya ku wê bibe cihê jîna min ya ebedî. Di her tiştê xêrê de tu 'emrê min zêde bikî û ji her tiştê xerabiyê mirina min bigerinî rehetiyê." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٧٤- وَعَنْ عَلِيٍّ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: قُلْ: (اللَّهُمَّ اهْدِنِي، وَسَدِّدْنِي). وَفِي رِوَايَةٍ: (اللَّهُمَّ إِنِّي أَسْأَلُكَ الْهُدَى، وَالسَّدَادَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1474- Ji 'Eliyê kurê Ebû Talib (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Tu bêje: Xwedayo! Tu min rasterê bikî û min bi ser bixî."

Di senedekê de: "Xwedayo! Ez ji te hîdayet û serkeftinê daxwaz dikim." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٧٥- وَعَنْ أَنَسٍ رضي الله عنه قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (اللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْعَجْزِ وَالْكَسَلِ وَالْجُبْنِ وَالْهَرَمِ، وَالْبُخْلِ، وَأَعُوذُ بِكَ مِنْ عَذَابِ الْقَبْرِ، وَأَعُوذُ بِكَ مِنْ فِتْنَةِ الْمَحْيَا وَالْمَمَاتِ).

وَفِي رِوَايَةٍ: (وَضَلَعِ الدَّيْنِ وَغَلَبَةِ الرِّجَالِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1475- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wiha dua dikir: "Xwedayo! Ji bêhêziyê, ji tiraliyê, ji tirsê, ji xurifandinê û ji çikûsiyê ez xwe dispêrime te. Ji 'ezabê gorê jî ez xwe dispêrime te. Dîsa ji fitna jîn û mirinê jî ez xwe dispêrime te."

Di senedekê de: "Ji stûxwarkirina deynan û ji zordestiya mêran jî ez xwe dispêrime te." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٧٦- وَعَنْ أَبِي بَكْرٍ الصِّدِّيقِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ: عَلِّمْنِي دُعَاءً أَدْعُو بِهِ فِي صَلَاتِي، قَالَ: (قُلِ اللَّهُمَّ إِنِّي ظَلَمْتُ نَفْسِي ظُلْماً كَثِيراً، وَلَا يَغْفِرِ الذُّنُوبَ إِلَّا أَنْتَ، فَاغْفِرْ لِي مَغْفِرَةً مِنْ عِنْدِكَ، وَارْحَمْنِي، إِنَّكَ أَنْتَ الْغَفُورُ الرَّحِيمُ) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1476- Ji Ebû Bekirê Siddîq (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Pêxemberê Xwedê (s.) re got: Tu duakî ku ez di nimêja xwe de pê dua bikim hînî min bike. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu bêje: Xwedayo! Bêguman min gelek sîtem û zordarî li xwe kiriye û ji xeynê te jî tu kes gunehan nabexşîne. Vêca tu bi bexşeke li cem xwe min bibexşîn û rehmê li min bike. Lewra tu 'efûkarî, dilovan î." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٤٧٧- وَعَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ: أَنَّهُ كَانَ يَدْعُو بِهَذَا الدُّعَاءِ: (اللَّهُمَّ اغْفِرِ لِي خَطِيئَتِي وَجَهْلِي، وَإِسْرَافِي فِي أَمْرِي، وَمَا أَنْتَ أَعْلَمُ بِهِ مِنِّي، اللَّهُمَّ اغْفِرِ لِي جِدِّي وَهَزْلِي، وَخَطَئِي وَعَمْدِي، وَكُلُّ ذلِكَ عِنْدِي، اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي مَا قَدَّمْتُ وَمَا أَخَّرْتُ، وَمَا أَسْرَرْتُ وَمَا أَعْلَنْتُ، وَمَا أَنْتَ أَعْلَمُ بِهِ مِنِّي، أَنْتَ الْمُقَدِّمُ، وَأَنْتَ الْمُؤَخِّرُ، وَأَنْتَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1477- Ji Ebû Mûsa (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) hatiye rîwayetkirin ku ewî (s.) bi vî duayî dua dikir: "Xwedayo! Tu şaşî û nezaniya min, kar û kiryarê min yê bêpîvan û gunehê ku tu ji min çêtir pê dizanî bibexşînî. Xwedayo! Tu ciddî û henekê min, şaşî û zaneyiyê min bibexşînî. Evan hemû jî li cem min hene. Xwedayo! Tu gunehê min; yê min borand û yê ku ezê ji vir şûn de bikim, gunehê min yê ku min veşartî kiriye, yê ku min eşkere kiriye bibexşînî. Her tu yî muqeddem û her tu yî mu'exxer. Û tu li ser hemû tiştî hêzdar î." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٧٨- وَعَنْ عَائِشَةَ، ﷺ، أَنَّ النَّبِيِّ ﷺ كَانَ يَقُولُ فِي دُعَائِهِ: (اللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنْ شَرِّ مَا عَمِلْتُ وَمِنْ شَرِّ مَا لَمْ أَعْمَلْ) رَوَاهُ مُسْلِم.

1478- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) di duayê xwe de wiha digot: "Xwedayo! Ez xwe dispêrime te ji xerabiyê kar û kiryarê min kiriye û nekiriye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٧٩ - وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: كَانَ مِنْ دُعَاءِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ: (اللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنْ زَوَالِ نِعْمَتِكَ، وَتَحَوُّلِ عَافِيَتِكَ، وَفُجَاءَةِ نِقْمَتِكَ، وَجَمِيعِ سَخَطِكَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1479- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Ev dua jî ji duayê Pêxemberê Xwedê (s.) bû: "Xwedayo! Ez xwe dispêrime te ji zailbûna nîmetên te, ji guherîna 'afiyeta te, ji nişkave-hatina 'ezabê te û ji temamê tiştên ku dibin sedem ji xeyda te re." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٨٠ - وَعَنْ زَيْدِ بْنِ أَرْقَمَ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (اللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْعَجْزِ وَالْكَسَلِ وَالْبُخْلِ وَالْهَرَمِ، وَعَذَابِ الْقَبْرِ، اللَّهُمَّ آتِ نَفْسِي تَقْوَاهَا، وَزَكِّهَا أَنْتَ خَيْرُ مَنْ زَكَّاهَا، أَنْتَ وَلِيُّهَا وَمَوْلَاهَا، اللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنْ عِلْمٍ لَا يَنْفَعُ، وَمِنْ قَلْبٍ لَا يَخْشَعُ، وَمِنْ نَفْسٍ لَا تَشْبَعُ، وَمِنْ دَعْوَةٍ لا يُسْتَجَابُ لَهَا). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1480- Ji Zeydê kurê Erqem (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wiha digot: "Xwedayo! Ji bêhêziyê, ji tiraliyê, ji çikûsiyê, ji xurifandinê û ji 'ezabê gorê ez xwe dispêrime te. Xwedayo! Tu teqwa nefsa min bidî û tu nefsa min paqij bikî. Bêguman tu xêrtirînê wan kesan î ku nefsê paqij dikin û tu xwedî û serwerê nefsa min î. Xwedayo! Ez xwe dispêrime te ji 'ilmê bêfeyde ji dilê bêtirs, ji nefsa çavbirçî û ji duayê ku nayê qebûlkirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٨١ - وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَقُولُ: (اللَّهُمَّ لَكَ أَسْلَمْتُ، وَبِكَ آمَنْتُ، وَعَلَيْكَ تَوَكَّلْتُ، وَإِلَيْكَ أَنَبْتُ وَبِكَ خَاصَمْتُ، وَإِلَيْكَ حَاكَمْتُ، فَاغْفِرْ لِي مَا قَدَّمْتُ، وَمَا أَخَّرْتُ، وَمَا أَسْرَرْتُ وَمَا أَعْلَنْتُ، أَنْتَ الْمُقَدِّمُ، وَأَنْتَ الْمُؤَخِّرُ، لَا إِلَهَ إِلَّا أَنْتَ).

زَادَ بَعْضُ الرُّوَاةِ: (وَلَا حَوْلَ وَلَا قُوَّةَ إِلَّا بِاللَّهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1481- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wiha digot: "Xwedayo! Min xwe her radest û teslîmî te kiriye, her bi te bawerî aniye, her li ser te tewekul kiriye, her ezê vegerim bi bal te ve, her bi hêz û quweta te min bi dijmin re şer kiriye û her kitêba te ez dixime hakim. Vêca tu gunehê min; yê min borandî û yê ku ezê ji vir şûnde bikim, gunehê min yê ku min veşartî eşkere kiriye bibexşînî. Her tu yî muqeddîm û her tu yî mu'exxîr. Û ji xeynê te tu Xwedê tune." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Hinek rawiyan ev zêde kiriye: "Û hêz û quwet bes bi Xwedê ye."

١٤٨٢- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يَدْعُو بِهَؤُلَاءِ الْكَلِمَاتِ: (اللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِن فِتْنَةِ النَّارِ، وَعَذَابِ النَّارِ، وَمِن شَرِّ الْغِنَى وَالْفَقْرِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1482- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) bi van gotinan dua dikir: "Xwedayo! Ez xwe dispêrime te ji fitne û 'ezabê agir û ji xerabiya dewlemendî û belengaziyê." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

١٤٨٣- وَعَنْ زِيَادِ بْنِ عِلَاقَةَ عَنْ عَمِّهِ، وَهُوَ قُطْبَةُ بْنُ مَالِكٍ ﵁ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يَقُولُ: (اللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنْ مُنْكَرَاتِ الأَخْلَاقِ، وَالأَعْمَالِ، وَالأَهْوَاءِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1483- ji Ziyadê kurê 'Îlaqe, ewî jî ji apê xwe Qutbeyê kurê Malik (r.) rîwayet kiriye ku ewî wiha digot: Pêxember (s.) wiha digot: "Xwedayo! Ez xwe dispêrime te ji exlaqên pîs, ji kiryarên pîs û ji daxwaziyên pîs." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٤٨٤- وَعَنْ شَكَلِ بنِ حُمَيْدٍ ﵁ قَالَ: قُلْتُ يَا رَسُولَ اللَّهِ: عَلِّمْنِي دُعَاءً، قَالَ: (قُلْ: اللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنْ شَرِّ سَمعِي، وَمِن شَرِّ بَصَرِي، وَمِنْ شَرِّ لِسَانِي، وَمِنْ شَرِّ قَلْبِي، وَمِنْ شَرِّ مَنِيِّي). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1484- Ji Şekelê kurê Humeyd (r.), got: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê, tu duayekî hînî min bike. Ewî (s.) got: "Tu bêje: Xwedayo! Ez xwe dispêrime te ji xerabiyên guh, çav, ziman, dil û fercê xwe." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٤٨٥- وَعَنْ أَنَسٍ ﵁ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يَقُولُ: (اللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْبَرَصِ، وَالْجُنُونِ، وَالْجُذَامِ، وَسَيِّئِ الأَسْقَامِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1485-Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) wiha digot: "Xwedayo! Ez xwe dispêrime te ji gurrîbûnê, ji dînbûnê, ji kotîbûnê û ji nexweşiyên nerind." *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٤٨٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (اللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْجُوعِ، فَإِنَّهُ بِئْسَ الضَّجِيعُ، وَأَعُوذُ بِكَ مِنَ الْخِيَانَةِ، فَإِنَّهَا بِئْسَتِ الْبِطَانَةُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1486- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) wiha digot: "Xwedayo! Ez xwe dispêrime te ji birçîbûnê, lewra ew dostekî pir xerab e. Û ez xwe dîsa dispêrime te ji bêbextiyê, lewra ew hevalekî pir xerab e." *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٤٨٧- وَعَنْ عَلِيٍّ ﷺ أَنَّ مُكَاتِباً جَاءَهُ، فَقَالَ: إِنِّي عَجِزْتُ عَنْ كِتَابَتِي فَأَعِنِّي، قَالَ: أَلَا أُعَلِّمُكَ كَلِمَاتٍ عَلَّمَنِيهِنَّ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لَوْ كَانَ عَلَيْكَ مِثْلُ جَبَلٍ دَيْناً أَدَّاهُ الله عَنْكَ؟ قُلْ: (اللَّهُمَّ اكْفِنِي بِحَلَالِكَ عَنْ حَرَامِكَ، وَأَغْنِنِي بِفَضْلِكَ عَمَّنْ سِوَاكَ). رَوَاهُ التِّرْمِذِيُّ، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1487- Ji 'Eliyê kurê Ebû Talib (r.) hatiye rîwayetkirin ku kolekî mukateb hate cem wî û got: Ez nikarim deynê kîtabeta xwe bidim, tu arîkariya min bike. Hz. 'Elî (r.) jî got: Ez hinek gotinên ku Pêxemberê Xwedê (s.) hînî min kirine, hînî te bikim? eger wekî çiyakî jî li ser te deyn hebe, Xwedê dê dayina wî deynî ji te re hêsan bike. Tu bêje: Xwedayo! Tu bi helalê xwe têra min bike ji heramê xwe biparêze û bi fedla xwe jî min ji xeynê xwe re hewcedar neke." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٤٨٨- وَعَنْ عِمْرَانَ بْنِ الْحُصَيْنِ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ عَلَّمَ أَبَاهُ حُصَيْناً كَلِمَتَيْنِ يَدْعُو بِهِمَا: (اللَّهُمَّ أَلْهِمْنِي رُشْدِي، وَأَعِذْنِي مِنْ شَرِّ نَفْسِي). رَوَاهُ التِّرْمِذِيُّ، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1488- Ji 'Îmranê kurê Husayn (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) du kelîme hînî bavê wî kir ku ew bi wan her du kelîman dua bike: "Xwedayo! Tu ji min re rêya rast îlham bikî û tu min ji xerabiya nefsa min biparêzî." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedis hesen e.*

١٤٨٩- وَعَنْ أَبِي الْفَضْلِ الْعَبَّاسِ بْنِ عَبْدِ الْمُطَّلِبِ ﷺ قَالَ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ: عَلِّمْنِي شَيْئاً أَسْأَلُهُ الله تَعَالَى، قَالَ: (سَلُوا اللَّهَ الْعَافِيَةَ) فَمَكَثْتُ أَيَّاماً، ثُمَّ جِئْتُ فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ: عَلِّمْنِي شَيْئاً أَسْأَلُهُ الله تَعَالَى، قَالَ لِي: (يَا عَبَّاسُ يَا عَمَّ رَسُولِ اللَّهِ، سَلُوا اللَّهَ العَافِيَةَ فِي الدُّنْيَا وَالآخِرَةِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

  

1489- Ji Ebû Fedl "'Ebbasê kurê 'Ebdulmuttelib (r.), got: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tiştekî ku ez pê daxwazî ji Xwedê bikim hînî min bikî. Ewî (s.) got: "Hûn ji Xwedê daxwaza 'afiyetê/xweşiyê bikin." Ez çend rojan sekinîm, paşê dîsa çûm û min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tiştekî ku ez pê daxwaziyê ji Xwedê bikim hînî min bike. Ewî (s.) jî ji min re got: "Ya 'Ebbas! Ya apê Pêxemberê Xwedê! Hûn ji Xwedê daxwaza 'afiyeta/xweşiya dîn û dunyayê bikin." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٤٩٠- وَعَنْ شَهْرِ بْنِ حَوْشَبٍ قَالَ. قُلْتُ لِأُمِّ سَلَمَةَ، ﵂، يَا أُمَّ الْمُؤْمِنِينَ مَا كَانَ أَكْثَرُ دُعاءِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ إِذَا كَانَ عِنْدَكِ؟ قَالَتْ: كَانَ أَكْثَرُ دُعَائِهِ: (يَا مُقَلِّبَ الْقُلُوبِ ثَبِّتْ قَلْبِي عَلَى دِينِكَ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1490- Ji Şehdê kurê Hewşeb (r.), got: Min ji Ummu Selemeyê (r.) re got: Ya Ummul-Mu'minin! Zehftirînê duayê Pêxemberê Xwedê (s.) wextê li bal te bû, çi bû? Ewê (r.) jî got: "Ya Xwedayê ku tu dilan vedigerînî! Tu dilê min li ser dînê xwe sabit bihêlî." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٤٩١- وَعَنْ أَبِي الدَّرْدَاءِ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: كَانَ مِنْ دُعَاءِ دَاوُدَ ﵇: (اللَّهُمَّ إِنِّي أَسْأَلُكَ حُبَّكَ، وَحُبَّ مَنْ يُحِبُّكَ، وَالْعَمَلَ الَّذِي يُبَلِّغُنِي حُبَّكَ، اللَّهُمَّ اجْعَلْ حُبَّكَ أَحَبَّ إِلَيَّ مِنْ نَفْسِي، وَأَهْلِي، وَمِنَ الْمَاءِ الْبَارِدِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1491- Ji Ebû Derda (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ji ji duayê Dawûd (s.) e: Xwedayo! Ez daxwaza hezkirina te, hezkirina kesê ku ji te hez dike û kar û kiryarê ku min bigihêjîne hezkirina te, ji te dikim. Xwedayo! Tu hezkirina xwe li bal min ve bigerînî şêrîntir ji nefsa min, ji zar û zêçê min, û ji ava cemidî." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٤٩٢- وَعَنْ أَنَسٍ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَلِظُّوا بِيَاذَا الْجَلَالِ وَالإِكْرَامِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي وَرَوَاهُ النَّسَائِيُّ مِنْ رِوَايَةِ رَبِيعَةَ بْنِ عَامِرٍ الصَّحَابِيِّ. قَالَ الْحَاكِمُ: حَدِيثٌ صَحِيحُ الإِسْنَادِ.

1492- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn bi ya *zul-celalî wel-îkram* dest bi duayê xwe bikin." *Tirmizî rîwayet kiriye. Nesaî jî ji seneda Rebîe'yê kurê Amir'ê Sehabî rîwayet kiriye. Hakim gotiye, seneda hedîsê sehîh e.*

١٤٩٣- وَعَنْ أَبِي أُمَامَةَ ﷺ قَالَ: دَعَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِدُعَاءٍ كَثِيرٍ، لَمْ نَحْفَظْ مِنْهُ شَيْئاً، قُلْنَا: يَا رَسُولَ الله، دَعَوْتَ بِدُعَاءٍ كَثِيرٍ لَمْ نَحْفَظْ مِنْهُ شَيْئاً، فَقَالَ: (أَلَا أَدُلُّكُمْ عَلَى مَا يَجْمَعُ ذَلِكَ كُلَّهُ؟ تَقُولُ: اللَّهُمَّ إِنِّي أَسْأَلُكَ مِنْ خَيْرِ مَا سَأَلَكَ مِنْهُ نَبِيُّكَ مُحَمَّدٌ ﷺ وأَعُوذُ بِكَ مِنْ شَرِّ مَا اسْتَعَاذَ مِنْهُ نَبِيُّكَ مُحَمَّدٌ ﷺ وَأَنْتَ الْمُسْتَعَانُ، وَعَلَيْكَ البَلَاغُ، وَلَا حَوْلَ وَلَا قُوَّةَ إِلَّا بِاللَّهِ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1493- Ji Ebû Umame (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) pir dua dikirin lê me gelek tişt jê ji ber nedikir. Me got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu pir dua dikî lê em gelek tiştî ji ber nakin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: Gelo, ez nîşanî we bidim tiştekî ku van hemûyan di xwe de kom dike? Hûn bêjin: Xwedayo! Bêguman ez ji te daxwaz dikim, xêrtirînê wî tiştê ku Pêxemberê te Hz. Muhemmed (s.) ji te daxwaz kiriye. Ez xwe dispêrime te ji xerabiya wî tiştê ku Pêxemberê te Hz. Muhemmed (s.) xwe jê spartiye. Her tu yî Mustean. (Yê ku daxwaza arîkariyê jê tê kirin). Her li ser te ye gihîştina mebestê, û hêz û quwet bes bi Xwedê ye." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

١٤٩٤- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: كَانَ مِنْ دُعَاءِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ: (اللَّهُمَّ إِنِّي أَسْأَلُكَ مُوجِبَاتِ رَحْمَتِكَ، وَعزَائِمَ مَغْفِرَتِكَ، وَالسَّلَامَةَ مِنْ كُلِّ إِثْمٍ، وَالْغَنِيمَةَ مِنْ كُلِّ بِرٍّ، وَالْفَوزَ بِالْجَنَّةِ، وَالنَّجَاةَ مِنَ النَّارِ). رَوَاهُ الحَاكِمُ أَبُو عَبْدِ اللَّهِ، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن عَلَى شَرْطِ مُسْلِم.

1494- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Eva jî ji duayê Pêxemberê Xwedê (s.) bû: "Xwedayo! Ez ji te daxwaza mucîbatê rehma te, 'ezîmeta bexşa te, parastina ji hemû gunehan, pirbûna her xêrê, rizgariya bi cennetê û xelasiya ji êgirî dikim." *Hakim Ebû 'Ebdullah rîwayet kiriye û gotiye, hedîs li ser şertê Muslim sehîh e.*

## بَابُ فَضْلِ الدُّعَاءِ بِظَهْرِ الْغَيْبِ

## DUAKIRINA JI HEVDU RE BI DIZÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

  

﴿وَالَّذِينَ جَاءُوا مِنْ بَعْدِهِم يَقُولُونَ رَبَّنَا اغْفِرْ لَنَا وَلِإِخْوَانِنَا الَّذِينَ سَبَقُونَا بِالإِيمَانِ﴾

"Ewên li pey wan hatin dibêjin: Rebbê me! Gunehê me û birayê me yên ku beriya me bawerî anîne 'efû bikî."[1]

﴿وَاسْتَغْفِرْ لِذَنْبِكَ وَلِلْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ﴾

"Daxwaza lêborînê ji bo gunehê xwe û gunehê hemû muminan; çi zilam û çi jin, bike."[2]

﴿رَبَّنَا اغْفِرْ لِي وَلِوَالِدَيَّ وَلِلْمُؤْمِنِينَ يَوْمَ يَقُومُ الْحِسَابُ﴾

"Rebbê me! Gunehê min û yê dê û bavê min û yê mu'minan, roja heq û hesab were kirin, 'efû bikî."[3]

١٤٩٥- وَعَنْ أَبِي الدَّرْدَاءِ ﷺ: أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَا مِن عَبْدٍ مُسْلِمٍ يَدْعُو لِأَخِيهِ بِظَهْرِ الْغَيْبِ إِلَّا قَالَ الْمَلَكُ: وَلَكَ بِمِثْلٍ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1495- Ji Ebû Derda (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye wiha digot: "Kîjan 'ebdê misilman li pişt birayê xwe jê re dua bike miheqeq milyaket dibêje: Bi qasî wî ji te re be jî." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٩٦- وَعَنْهُ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَقُولُ (دَعْوَةُ الْمَرْءِ الْمُسْلِمِ لِأَخِيهِ بِظَهْرِ الْغَيْبِ مُسْتَجَابَةٌ، عِنْدَ رَأْسِهِ مَلَكٌ مُوَكَّلٌ كُلَّمَا دَعَا لِأَخِيهِ بِخَيْرٍ قَالَ الْمَلَكُ الْمُوَكَّلُ بِهِ: آمِينَ، وَلَكَ بِمِثْلٍ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1496- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wiha digot: "Duayê misilman yê ji bo birayê xwe dike li paş wî tê qebûl kirin û milyaketek hatiye tayînkirin li ber serê wî, ew mirov ji birayê xwe re çiqasî daxwaza xêrê dike ew milyaketê hatiye tayînkirin jî dibêje: Amîn, bi qasî wî ji te re be jî." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابٌ فِي مَسَائِلِ مِنَ الدُّعَاءِ

## ÇEND MESELE DERBARÊ DUAYÊ DE

١٤٩٧- عَنْ أُسَامَةَ بْنِ زَيدٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ صُنِعَ إِلَيْهِ مَعْرُوفٌ، فَقَالَ

1 Heşr, 59/10.
2 Muhemmed, 47/19.
3 Îbrahîm, 14/41.

لِفَاعِلِهِ: جَزَاكَ اللَّهُ خَيْراً، فَقَدْ أَبْلَغَ فِي الثَّنَاءِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1497- Ji Usameyê kurê Zeyd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê jê re qenciyek hatibe kirin, vêca ew jî ji xwedanê wê qenciyê re bêje: ‘*Cezakellahû xeyren,* (Xweda jî xelata te ya xêrê bide te),’ miheqeq ewî bi şiklekî baş pesnê wî daye.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

١٤٩٨- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَدْعُوا عَلَى أَنْفُسِكُمْ، وَلَا تَدْعُوا عَلَى أَوْلَادِكُمْ، وَلَا تَدْعُوا عَلَى أَمْوَالِكُم، لَا تُوَافِقُوا مِنَ اللهِ سَاعَةً، يُسْأَلُ فِيهَا عَطَاءً، فَيَسْتَجِيبَ لَكُمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1498- Ji Cabir (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn nifiran li xwe, li ewladê xwe û li malê xwe nekin, dibe ku rastî wê sa‘etê were ku tê de dua qebûl dibin.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٤٩٩- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (أَقْرَبُ مَا يَكُونُ الْعَبْدُ مِن رَبِّهِ وَهُوَ سَاجِدٌ، فَأَكْثِرُوا الدُّعَاءَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1499- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Bi piranî ‘ebd di halê secdê de nêzîkî Rebbê xwe ye. Vêca hûn di secdê de zehf dua bikin.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٠٠- وَعَنْهُ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (يُسْتَجَابُ لِأَحَدِكُمْ مَا لَمْ يَعْجَلْ، يَقُولُ: قَدْ دَعَوْتُ رَبِّي، فَلَمْ يُسْتَجَبْ لِي). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: (لَا يَزَالُ يُسْتَجَابُ لِلْعَبْدِ مَا لَم يَدْعُ بِإِثْمٍ، أَوْ قَطِيعَةِ رَحِمٍ، مَا لَمْ يَسْتَعْجِلْ) قِيلَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، مَا الإِسْتِعْجَالُ؟ قَالَ: يَقُولُ: (قَدْ دَعَوْتُ، وَقَدْ دَعَوْتُ، فَلَمْ أَرَ يَسْتَجِيبُ لِي، فَيَسْتَحْسِرُ عِنْدَ ذلِكَ، وَيَدَعُ الدُّعَاءَ).

1500- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Duayê yekî ji we tê qebûl kirin gava ku lez neke û nebêje: Min daxwaz ji Rebbê xwe xwest lê dua û daxwaza min nehate qebûl kirin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di seneda Muslim de: “Her duayê ‘ebdê misilman tê qebûl kirin gava

  

ku bi guneh û yan bi birrîna sileya rehmê yan jî bi îsti'calî dua neke." Hatê gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Îsti'cal çi ye? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Dibêje: Ha min dua kir, ha min dua kir lê min nedît ku duayê min hate qebûl kirin. Îcar sist dibe û dev ji dua berdide."

١٥٠١- وَعَنْ أَبِي أُمَامَةَ ﷺ قَالَ: قِيلَ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ: أَيّ الدُّعَاءِ أَسْمَعُ؟ قَالَ (جَوْفَ اللَّيْلِ الآخِرِ وَدُبُرَ الصَّلَوَاتِ الْمَكْتُوبَاتِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1501- Ji Ebû Umame (r.), got: Hate gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Kîjan dua pirtir tê qebûl kirin? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Duayê di nîvê şevê yê dawiyê û piştî nimêjên ferz." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٥٠٢- وَعَنْ عُبَادَةَ بْنِ الصَّامِتِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَا عَلَى الأَرْضِ مُسْلِمٌ يَدْعُو الله تَعَالَى بِدَعْوَةٍ إِلَّا آتَاهُ الله إِيَّاهَا، أَوْ صَرَفَ عَنْهُ مِنَ السُّوءِ مِثْلَهَا مَا لَمْ يَدْعُ بِإِثْمٍ، أَوْ قَطِيعَةِ رَحِمٍ) فَقَالَ رَجُلٌ مِنَ الْقَوْمِ: إِذاً نكْثِرُ قَالَ: (الله أَكْثَرُ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيح وَرَوَاهُ الْحَاكِمُ مِنْ رِوَايَةِ أَبِي سَعِيد وَزَادَ فِيهِ (أَوْ يدَّخر لَهُ مِنَ الأَجْرِ مثْلهَا)

1502- Ji 'Ubadeyê kurê Samit (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Li ser rûyê erdê misilmanek wexta bi duayekî daxwazê ji Xwedê te'ala bike, gava ku bi guneh û yan jî bi birrîna sileya rehmê dua neke." Vêca miroveki ji cema'etê got: Wî çaxî emê pir dua bikin. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Xwedê te'ala jî wê pirtir bide." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

Hakim jî ji seneda Ebû Seîd rîwayet kiriye û ev lê zêde kiriye: "An jî wê Xwedê te'ala ji bo wî mirovî bi qasî daxwaza wî wê xêrê jê re veşêre axîretê."

١٥٠٣- وعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَقُولُ عِنْدَ الْكَرْبِ: (لَا إِلَهَ إِلَّا الله الْعَظِيمُ الْحَلِيمُ، لَا إِلَهَ إِلَّا الله رَبُّ الْعَرْشِ العَظِيمُ، لَا إِلَهَ إِلَّا الله رَبُّ السَّمَاوَاتِ، وَرَبُّ الأَرْضِ، وَرَبُّ الْعَرْشِ الْكَرِيم). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1503- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) wextê xemgîn bûya wiha digot: "Ji xeynê Xwedayê mezin û helîm/bêhnfireh

tu îlah tune, ji xeynê Xwedayê ku Rebbê 'erşê mezin e tu îlah tune, ji xeynê Xwedayê ku Rebbê asîmanan, Rebbê erdê û Rebbê 'erşê pîroz, e tu îlah tune." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ كَرَامَاتِ الأَوْلِيَاءِ وَفَضْلِهِمْ
## KERAMETÊ WELIYAN Û FEZÎLETA WAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿أَلَا إِنَّ أَوْلِيَاءَ الله لَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ ۝ الَّذِينَ آمَنُوا وَكَانُوا يَتَّقُونَ ۝ لَهُمُ الْبُشْرَى فِي الْحَيَاةِ الدُّنْيَا وَفِي الآخِرَةِ لَا تَبْدِيلَ لِكَلِمَاتِ اللَّهِ ذٰلِكَ هُوَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُ﴾

"Agahdar bin! weliyên Xwedê; ne tirs ji bo wan heye û ne jî xemxwar dibin. (Weliyen Xwedê) ewê (ji dil) bawerî anîne û (paşê rast û dirust) parêzgeriya Xwedê dikin. Di jiyana dunyayê û axîretê de mizgînî ji bo wan heye. Tu car tu guherîn ji bo peymana Xwedê tune. Eva ye rizgariya mezin."[1]

﴿وَهُزِّي إِلَيْكِ بِجِذْعِ النَّخْلَةِ تُسَاقِطْ عَلَيْكِ رُطَباً جَنِيّاً ۝ فَكُلِي وَاشْرَبِي وَقَرِّي عَيْناً﴾

"(Ey Meryem!) çiqul dara xurmê li nik xwe ve bihejîne, xurmê ter û gihîştî wê bi ser te de werin. Vêca bixwe û vexwe."[2]

﴿كُلَّمَا دَخَلَ عَلَيْهَا زَكَرِيَّا الْمِحْرَابَ وَجَدَ عِنْدَهَا رِزْقاً قَالَ يَا مَرْيَمُ أَنَّى لَكِ هَذَا قَالَتْ هُوَ مِنْ عِنْدِ اللَّهِ إِنَّ اللَّهَ يَرْزُقُ مَنْ يَشَاءُ بِغَيْرِ حِسَابٍ﴾

"Çiqas cara Zekeriya biçûya cem Meryemê di cihê perestina wê de, fêkî û xwarin li cem wê didît û digot: Meryemê! Eva ji bo te ji kuderê ve tê? Ewê got: Eva ji nik Xwedê (ji bo min tê). Bi rastî Xweda, kê bivê bê hejmar kerem û xêran didê."[3]

﴿وَإِذِ اعْتَزَلْتُمُوهُمْ وَمَا يَعْبُدُونَ إِلَّا الله فأْوُوا إِلَى الْكَهْفِ يَنْشُرْ لَكُمْ رَبُّكُمْ مِنْ رَحْمَتِهِ وَيُهَيِّئْ لَكُمْ مِنْ أَمْرِكُمْ مِرْفَقاً ۝ وَتَرَى الشَّمْسَ إِذَا طَلَعَتْ تَزَاوَرُ عَنْ كَهْفِهِمْ ذَاتَ الْيَمِينِ وَإِذَا غَرَبَت تَقْرِضُهُمْ ذَاتَ الشِّمَالِ﴾

1 Yûnus, 10/62-64.
2 Meryem, 19/25-26.
3 Alî 'Îmran, 3/37.

"Gava we xwe ji wan û ji yê ku wan di şûna Xwedê de diperistin, dûr xist û xwe jê da paş, vêca xwe bigihînine (herine) şikeftê. Xwedayê we dê dilovaniya xwe li ser we fireh bike û kar û barê we ku hûn tê de ne û tiştê hûn feydê jê bibînin; ji xwarin û vexwarinê, dê ji bo we bi hêsanî bike. Tu dê bibînî wextê roj hildihat tirêjkê wê rêya xwe li ser rexê rastê yê şikeftê diguhirand û wextê diçû ava ji milê çepê ve li wan nedida û ji wan diborî."[1]

١٥٠٤- وَعَنْ أَبِي مُحَمَّدٍ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ أَبِي بَكْرٍ الصِّدِّيقِ ﷺ: أَنَّ أَصْحَابَ الصُّفَّةِ كَانُوا أُنَاساً فُقَرَاءَ وَأَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ مَرَّةً: (مَنْ كانَ عِنْدَهُ طَعَامُ اثْنَيْنِ، فَلْيَذْهَبْ بِثَالِثٍ، وَمَنْ كَانَ عِنْدَهُ طَعَامُ أَرْبَعَةٍ، فَلْيَذْهَبْ بِخَامِسٍ بِسَادِسٍ) أَوْ كَمَا قَالَ: وَأَنَّ أَبَا بَكْرٍ ﷺ جَاءَ بِثَلَاثَةٍ، وَانْطَلَقَ النَّبِيُّ ﷺ بِعَشَرَةٍ، وَأَنَّ أَبَا بَكْرٍ تَعَشَّى عِنْدَ النَّبِيِّ ﷺ ثُمَّ لَبِثَ حَتَّى صَلَّى الْعِشَاءَ، ثُمَّ رَجَعَ، فَجَاءَ بَعْدَ مَا مَضَى مِنَ اللَّيْلِ مَا شَاءَ الله، قَالَتْ لَهُ إِمْرَأَتُهُ: مَا حَبَسَكَ عَنْ أَضْيَافِكَ؟ قَالَ: أَوَ مَا عَشَّيتَهِمْ؟ قَالَتْ: أَبَوْا حَتَّى تَجِيءَ وَقَدْ عَرَضُوا عَلَيْهِمْ قَالَ: فَذَهَبْتُ أَنَا، فَاخْتَبَأْتُ، فَقَالَ: يَا غُنْثَرُ، فَجَدَّعَ وَسَبَّ، وَقَالَ: كُلُوا لَا هَنِيئاً، والله لَا أَطْعَمُهُ أَبَداً، قَالَ: وَأيمُ الله مَا كُنَّا نَأْخذُ مِنْ لُقْمَةٍ إِلَّا رَبا مِنْ أَسْفَلِهَا أَكْثَرُ مِنْهَا حَتَى شَبِعُوا، وَصَارَتْ أَكْثَرَ مِمَّا كَانَتْ قَبْلَ ذَلِكَ، فَنَظَرَ إِلَيْهَا أَبُو بكْرٍ، فَقَالَ لِإمْرَأَتِهِ: يَا أُخْتَ بَنِي فِرَاسٍ، مَا هذَا؟ قَالَتْ: لَا، وَقُرَّةِ عَيْنِي لَهِيَ الآنَ أَكثَرُ مِنْها قَبْلَ ذَلِكَ بِثَلَاثِ مَرَّاتٍ فَأَكَلَ مِنْهَا أَبُو بَكْرٍ وَقَالَ: إِنَّمَا كَانَ ذَلِكَ مِنَ الشَّيْطَانِ، يَعني يَمِينَهُ. ثُمَّ أَكَلَ مِنْهَا لُقْمَةً، ثُمَّ حَمَلَهَا إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَأَصْبَحَتْ عِنْدَهُ، وَكَانَ بَيْنَنَا وَبَيْنَ قَومٍ عَهْدٌ، فَمَضَى الأَجَلُ، فَتَفَرَّقنَا اثني عَشَرَ رَجُلاً، مَعَ كُلِّ رَجُلٍ مِنْهُم أُنَاسٌ، الله أَعْلَم كَمْ مَعَ كُلِّ رَجُلٍ، فَأَكَلُوا مِنْهَا أَجْمَعُونَ.

وَفِي رِوَايَةٍ: فَحَلَفَ أَبُو بكرٍ لَا يَطْعَمُهُ، فَحَلَفَتِ الْمَرْأَةُ لَا تَطْعَمُهُ، فَحَلَفَ الضَّيفُ -أَوِ الأَضْيَافُ- أَنْ لَا يَطْعَمَهُ، أَوْ يَطعَمُوهُ حَتَّى يَطْعَمَهُ، فَقَالَ أَبُو بَكْرٍ: هَذِهِ مِنَ الشَّيْطَانِ،

1 Kehf, 18/16-17.

فَدَعَا بِالطَّعَامِ، فَأَكَلَ وَأَكَلُوا، فَجَعَلُوا لَا يَرْفَعُونَ لُقْمَةً إِلَّا رَبَتْ مِنْ أَسْفَلِهَا أَكْثَرُ مِنْهَا، فَقَالَ: يَا أُخْتَ بَنِي فِرَاسٍ، مَا هَذَا؟ فَقَالَتْ: وَقُرَّةِ عَيْنِي، إِنَّهَا الآنَ لَأَكْثَرُ مِنْهَا قَبْلَ أَنْ نَأْكُلَ، فَأَكَلُوا، وَبَعَثَ بِهَا إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَذَكَرَ إِنَّهُ أَكَلَ مِنْهَا.

وَفِي رِوَايَةٍ: إِنَّ أَبَا بَكْرٍ قَالَ لِعَبْدِ الرَّحْمنِ: دُونَكَ أَضْيَافَكَ، فَإِنِّي مُنْطَلِقٌ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَافْرُغْ مِنْ قِرَاهُمْ قَبْلَ أَنْ أَجِيءَ، فَانْطَلَقَ عَبْدُ الرَّحْمنِ، فَأَتَاهُم بِمَا عِنْدَهُ، فَقَالَ: اطْعَمُوا، فَقَالُوا: أَيْنَ رَبُّ مَنْزِلِنَا؟ قَالَ: اطْعَمُوا، قَالُوا: مَا نَحْنُ بِآكِلِينَ حَتَّى يَجِيءَ رَبُّ مَنْزِلِنَا، قَالَ: اقْبَلُوا عَنَّا قِرَاكُمْ، فَإِنَّهُ إِنْ جَاءَ وَلَمْ تَطْعَمُوا، لَنَلْقَيَنَّ مِنْهُ، فَأَبَوْا، فَعَرَفْتُ أَنَّهُ يَجِدُ عَلَيَّ، فَلَمَّا جَاءَ تَنَحَّيْتُ عَنْهُ، فَقَالَ: مَا صَنَعْتُمْ؟ فَأَخبَرُوه، فَقَالَ: يَا عَبْدَ الرَّحْمنِ، فَسَكَتُّ، ثُمَّ قَالَ: يَا عَبْدَ الرَّحمنِ فَسَكَتُّ فَقَالَ: يَا غُنْثَرُ، أَقْسَمْتُ عَلَيْكَ إِنْ كُنْتَ تَسْمَعُ صَوْتِي لَمَّا جِئْتَ، فَخَرَجْتُ، فَقُلْتُ: سَلْ أَضْيَافَكَ، فَقَالُوا: صَدَقَ، أَتَانَا بِهِ، فَقَالَ: إِنَّمَا انْتَظَرْتُمُونِي، وَاللَّهِ، لَا أَطْعَمُهُ اللَّيْلَةَ، فَقَالَ الآخَرُونَ: وَاللَّهِ لَا نَطْعَمُهُ حَتَّى تَطْعَمَهُ، فَقَالَ: وَيْلَكُمْ مَالَكُمْ لَا تَقْبَلُونَ عَنَّا قِرَاكُمْ؟ هَاتِ طَعَامَكَ، فَجَاءَ بِهِ، فَوَضَعَ يَدَهُ، فَقَالَ: بِسمِ اللَّهِ، الأَولَى مِنَ الشَّيْطَانِ، فَأَكَلَ وَأَكَلُوا. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1504- Ji Ebû Muhemmed ‘Ebdurrehmanê kurê Ebû Bekirê Siddîq (r.) hatiye rîwayetkirin ku Eshabê Suffê hinek mirovên jar û feqîr bûn û Pêxemberê Xwedê (s.) jî carekê got: “Çi kesê xwarina du mirovan li bal wî hebe bila yê sisiyan bi xwe re bibe û çi kesê xwarina çaran li bal wî hebe bila yê pêncan û yê şeşan bi xwe re bibe.” An jî Pêxemberê Xwedê (s.) gotineke bi vê manê got. Li ser vê yekê Ebû Bekir (r.) sê mirov anîn û Pêxemberê Xwedê (s.) jî deh mirov birine mala xwe. Ebû Bekir (r.) li bal Pêxemberê Xwedê (s.) şîv xwar, paşê jî heta nimêja ‘eşayê kir li cem wî (s.) ma û paşê piştî ku qederek ji şevê derbas bû vegeriya hate mala xwe. Xanima wî jê re got: Çi Te ji mêvanê te girt û dûr kir ku tu nehatî bal wan? Ebû Bekir (r.) got: Qey te şîva wan nedaye wan? Xanima wî got: Ewan xwarin qebûl nekirin heta ku tu werî. Xulaman xwarin berpêşê wan kirin lê wan qebûl nekirin. ‘Ebdurrehman dibêje: Ez çûm min xwe veşart. Vêca Ebû Bekir (r.) gazî wî kir û got: Ey bêmejiyê bêferaset. Û jê re gef

xwar û çêr kir. Û ji mêvanan re got: Hûn bixwin ne 'afiyet be,[1] bi sond ez wê xwarinê qet naxwim. 'Ebdurrehman dibêje: Bi sond, me çiqas pariyek dixwar me didît ku ji binê wê de zêde dibe ji berê gelektir, heta mêvan têr bûn û ew xwarina me ji berê zehftir ma. Vêca Ebû Bekir li kasêka xwarinê nihêrî û ji xanima xwe re got: Ya xuşka Benî Firas! Ev çi ye? Xanima wî got: Ez bi ronahiya çavê xwe kim ku ev xwarin ya niha ji berê bi sê caran pirtir e. Ebû Bekir (r.) jî jê xwar û got: Ew sonda min bes ji aliyê şeytan ve bû. Paşê pariyek din jî xwar û piştre ew xwarin ji Pêxemberê Xwedê (s.) re şand û ew xwarin heta sibê li bal Pêxember ma. Di neqeba me û qewmekî de 'ehdek hebû û wextê wê jî xelas bûbû (û ew jî hatibûne Medînê). Me ji wî qewmî dozdeh mirov veqetandin ku digel her yek ji wan jî hinekê ji wan hebûn, ku Xwedê çêtir dizane ku bi her yekî re çiqas mirov hebûn, vêca wan hemûyan ji wê xwarinê xwarin.

Di senedekê de: Ebû Bekir (r.) sond xwar ku ji wê xwarinê nexwe, vêca xanima wî jî û mêvanê wî jî sond xwarin gotin heta Ebû Bekir nexwe em jî naxwin. Îcar li ser vê yekê Ebû Bekir (r.) got: Ev sonda min bes ji aliyê şeytan ve ye. Û mêvan keremê xwarinê kir, ewî jî xwar û wanê din jî xwarin. Ewan çiqas pariyek dixwarin miheqeq ji binê wê de ew xwarin zêde dibû ji berê gelektir. Vêca Ebû Bekir got: Ya xuşka Benî Firas! Ev çi ye? Xanima wî jî got: Ez bi ronahiya çavê xwe kim ku ev xwarin ya niha ji beriya ku em bixwin pirtir e. Vêca ewan ew xwarin xwarin û Ebû Bekir ji Pêxember (s.) re jî şand. Rawî dibêje ku Pêxemberê Xwedê (s.) jî ji wê xwarinê xwariye.

Di senedekê de jî: Ebû Bekir (r.) ji 'Ebdurrehman re got: Mêvan emanetê te, ezê herim bi bal Pêxemberê Xwedê (s.) lê tu mêvanan raçav bikî û wan biezimîne beriya ku ez werim. 'Ebdurrehman çû zad û xwarina wan anî û got: Kerem kin bixwin. Mêvanan gotin: Ka xwediyê mala ku em tê de ne. 'Ebdurrehman got: Hûn kerem kin bixwin. Ewan gotin: Heta xwediyê malê neyê em naxwin. 'Ebdurrehman got: Ew xwarina ku me amade kiriye hûn qebûl bikin bixwin, lewra eger xwediyê malê bê û we jî xwarin nexwaribe wê bi min bixeyîde. Mêvana xwe ji xwarinê paş dan û min zanî wê Ebû Bekir bi min bixeyîde. Wextê ew hat min xwe jê veşart. Ebû Bekir (r.) ji mêvanan re got: We çi kir? Ewan jî rewşa xwe jê re gotin. Li ser vê yekê Ebû Bekir gazî kir û got: Ya 'Ebdurrehman! Min dengê xwe nekir, paşê dîsa gazî kir: Ya 'Ebdurrehman! Min dîsa dengê xwe nekir. Ewî (r.) got: Ey bêmêjiyê bêferaset, eger tu dengê min dibîhîzî, tu bi Xwedê kî, tu werî. 'Ebdurrehman dibêje: Ez derketim hatim û min got: Tu dixwazî ji

1 Ev gotin ji ber ku heta hingî xwarin nexwaribûn Ebû Bekir (r.) qehirîbû.

mêvanan pirs bike. Ewan got: Ew rast dibêje, xwarin ji me re anî. Vêca Ebû Bekir (r.) got: Naxwe hûn bes li hêviya min mane? Bi sond, ez jî îşev xwarinê naxwim. Îcar ewan jî gotin: Bi sond, heta tu nexwî em jî naxwin. Vêca Ebû Bekir (r.) got: Heyf! Çi bûye bi we ku hûn amadeyiya me ya ji we re qebûl nakin? Haydê kerem kine xwarinê. Xwarin hat, ewî destê xwe danî û got: Bismillah. Sonda berê ji şeytan bû. Vêca ewî xwar û wan mêvanan jî xwarin. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٥٠٥- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَقَدْ كَانَ فِيمَا قَبْلَكُمْ مِنَ الأُمَمِ نَاسٌ مُحَدَّثُونَ، فَإِنْ يَكُ فِي أُمَّتِي أَحَدٌ، فَإِنَّهُ عُمَرُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي، وَرَوَاهُ مُسْلِمٌ مِنْ رِوَايَةِ عَائِشَةَ.

1505- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Di nav ummetên beriya we de hinek mirovê xwedî îlham û huner hebûn, eger di ummeta min de jî yekî xwedî îlham hebe bêguman ew jî 'Umerê kurê Xettab e." *Buxarî riwayet kiriye û Muslim jî ji Hz. 'Aîşe riwayet kiriye.*

١٥٠٦- وَعَنْ جَابِرِ بْنِ سَمُرَةَ ﷺ قَالَ: شَكَا أَهْلُ الْكُوفَةِ سَعْداً، يَعْنِي: ابْنَ أَبِي وَقَّاصٍ ﷺ إِلَى عُمَرَ بْنِ الخَطَّابِ ﷺ فَعَزَلَهُ وَاسْتَعْمَلَ عَلَيْهِمْ عَمَّاراً، فَشَكَوْا حَتَّى ذَكَرُوا أَنهُ لَا يُحْسِنُ يُصَلِّي، فَأَرْسَلَ إِلَيْهِ، فَقَالَ: يَا أَبَا إِسْحَاقَ، إِنَّ هؤُلاءِ يَزْعُمُونَ أَنَّكَ لَا تُحْسِنُ تُصَلِّي، فَقَالَ: أَمَّا أَنَا وَاللَّهِ فَإِنِّي كُنْتُ أُصَلِّي بِهِمْ صَلَاةَ رَسُولِ الله ﷺ لَا أَخْرِمُ عَنْهَا، أُصَلِّي صَلَاةَ العِشَاءِ فَأَرْكُدُ فِي الأَولَيَيْنِ، وَأُخِفُّ فِي الأُخْرَيَيْنِ، قَالَ: ذلِكَ الظَّنُّ بِكَ يَا أَبَا إِسْحَاقَ، وَأَرْسَلَ مَعَهُ رَجُلاً، أَوْ رِجَالاً، إِلَى الكُوفَةِ يَسْأَلُ عَنْهُ أَهْلَ الكُوفَةِ، فَلَمْ يَدَعْ مَسْجِداً إِلَّا سَأَلَ عَنْهُ، وَيُثْنُونَ مَعْرُوفاً، حَتَّى دَخَلَ مَسْجِداً لِبَنِي عَبْسٍ، فَقَامَ رَجُلٌ مِنْهُمْ، يُقَالُ لَهُ: أُسَامَةُ بْنُ قَتَادَةَ، يُكَنَّى أَبَا سَعْدَةَ، فَقَالَ: أَمَا إِذْ نَشَدْتَنَا فَإِنَّ سَعْداً كَانَ لَا يَسِيرُ بِالسَّرِيَّةِ وَلَا يَقْسِمُ بِالسَّوِيَّةِ، وَلَا يَعْدِلُ فِي القَضِيَّةِ، قَالَ سَعْدٌ: أَمَا واللَّهِ لأَدْعُوَنَّ بِثَلَاثٍ: اللَّهُمَّ إِنْ كَانَ عَبْدُكَ هذَا كَاذِباً، قَامَ رِيَاءً، وَسُمْعَة، فَأَطِلْ عُمرهُ، وَأَطِلْ فَقْرَهُ، وَعَرِّضْهُ لِلفِتَنِ، وَكَانَ بَعْدَ ذلِكَ إِذَا سُئِلَ يَقُولُ: شَيْخٌ كَبِيرٌ مَفْتُونٌ، أَصَابَتْنِي دَعْوَةُ سَعْدٍ

قَالَ عَبْدُ المَلِكِ بْنُ عُمَيْر الرَّاوِي عَنْ جَابِرِ بْنِ سَمُرَةَ: فَأَنَا رَأَيْتُهُ بَعْدُ قَدْ سَقَطَ حَاجِبَاهُ عَلَى عَيْنَيْهِ مِنَ الْكِبَرِ، وَإِنَّهُ لَيَتَعَرَّضُ للجَوَارِي فِي الطُرُقِ فَيَغْمِزهُنَّ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1506- Ji Cabirê kurê Semure (r.), got: Xelkê Kûfeyê şikayet Se'dê kurê Ebû Weqqas (r.) li 'Emerê kurê Xettab (r.) kirin. Vêca Hz. 'Umer, Se'd ji 'Iraqê dûr xist/'ezil kir û di cihê wî de 'Emmarê kurê Yasir (r.) kir parêzgerê wan. Xelkê Kûfeyê şikayetê Se'd wisa pêşve birin heta îddîa kirin ku Se'd nizane baş nimêj bike. Li ser vê yekê Hz. 'Umer (r.) gazî wî kir û got: Ya Ebû Îshaq! Bêguman evanê hanê îddîa dikin ku tu nizanî pak nimêj bikî. Se'd jî got: Heçîka ez, bi sond, wekî nimêja Pêxemberê Xwedê (s.) li pêşiya nimêj dikim, ez tiştekî ji wê kêm nakim û ez li pêşiya wan nimêja 'eşayê dikim; her du rekatên pêşiyê dirêj dikim û rekatên dawiyê jî sivik dikim. Hz. 'Umer (r.) got: Ya Ebû Îshak! Zenna wan derbarê te de ev e. Hz. 'Umer (r.) mirovek û yan jî çend mirov digel Se'd (r.) şandine Kûfeyê da ku pirsiyara wî ji xelkê bikin. Ewan tu mizgeft nehiştin, miheqeq ji cema'eta wê pirsa Se'd kirin û ehlê cema'eta temamê mizgeftan pesnê başiya Se'd dan. Heta ku çûne mizgefta êla Benî 'Ebs, vêca mirovek ji wan rabû jipiyan, ku jê re dihate gotin Usameyê kurê Qetade û navdanka wî jî Ebû Se'd bû, û got: Madem ku we em dane sondê, ezê jî derbarê Se'd de biaxivim. Bêguman Se'd digel nijdyê nediçû cîhadê, xenîmet û talan wekhev parve nedikir û di hukmê xwe de dadmendî nedikir. Îcar Se'd (r.) jî got: Bi sond, ezê sê nifiran li te bikim: Xwedayo! Heger ev 'ebdê te yê hanê derewker be û bi durûtî û rûmetî rabû be tu 'umrê wî dirêj bikî, feqîrî û jarbûna wî zêde bikî û tu ewî duçarê bela û musîbetan bikî. Vêca Usameyê kurê Qetade piştî vê yekê wisa lê hatibû, wextê yekî pirsiyara rewşa wî bikira ewî digot: Ez kalemêrek im, dûçarê fitna bûme û nifirê Se'dê kurê Ebû Weqqas xenîmê min bû.

'Ebdulmelikê kurê 'Umeyr yê ku ji Cabirê kurê Semure rîwayet kiriye, wiha dibêje: Min Usameyê kurê Qetade piştî demekê dît ku ji kalbûnê birûyên wî ketibûn ser çavên wî û di rêyan de tev keçikan dibû û ew diquncirand. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٠٧- وَعَنْ عُرْوَةَ بْنِ الزُّبَيْرِ أَنَّ سَعِيدَ بْنَ زَيْدِ بْنِ عَمْرِو بْنِ نُفَيْلٍ ﷺ خَاصَمَتْهُ أَرْوَى بِنْتُ أَوْسٍ إِلَى مَرْوَانَ بْنِ الْحَكَمِ، وَادَّعَتْ أَنَّهُ أَخَذَ شَيْئاً مِنْ أَرْضِهَا، فَقَالَ سَعِيدٌ: أَنَا كُنْتُ آخُذُ مِنْ أَرْضِهَا شَيْئاً بَعْدَ الَّذِي سَمِعْتُ مِنْ رَسُولِ الله ﷺ قَالَ: مَاذَا سَمِعْتَ مِنْ

رَسُولِ اللَّهِ ﷺ؟ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ أَخَذَ شِبْراً مِنَ الأَرْضِ ظُلْماً، طوِّقَهُ إِلَى سَبْعِ أَرَضِينَ) فَقَالَ لَهُ مَرْوَانُ: لَا أَسْأَلُكَ بَيِّنَةً بَعْدَ هَذَا، فَقَالَ سَعِيدٌ: اللَّهُمَّ إِنْ كَانَتْ كَاذِبَةً، فَأَعْمِ بَصَرَهَا، وَاقْتُلْهَا فِي أَرْضِهَا، قَالَ: فَمَا مَاتَتْ حَتَّى ذَهَبَ بَصَرُهَا، وَبَيْنَمَا هِيَ تَمْشِي فِي أَرْضِهَا إِذْ وَقَعَتْ فِي حُفْرَةٍ فَمَاتَتْ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ عَنْ مُحَمَّدِ بْنِ زَيْدِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ بِمَعْنَاهُ، وَأَنَّهُ رَآهَا عَمْيَاءَ تَلْتَمِسُ الجُدُرَ تَقُولُ: أَصَابَتْنِي دَعْوَةُ سَعِيدٍ، وَأَنَّهَا مَرَّتْ عَلَى بِئْرٍ فِي الدَّارِ الَّتِي خَاصَمَتْهُ فِيهَا، فَوَقَعَتْ فِيهَا، فَكَانَتْ قَبْرَهَا.

1507- Ji ‘Urweyê kurê Zubeyr (r.) hatiye rîwayetkirin ku Erwa keça Ews, şikayetê Se‘îdê kurê Zeydê kurê ‘Emrê kurê Nufeyl (r.) li bal Merwanê kurê Hekem (darêzgehê Medînê) kir û îddîa kir ku ewî parçek ji erdê wê çopandiye. Li ser vê yekê Se‘îd (r.) got: Ezê çawa parçeyekî erdê wê bigirim piştî tiştê ku min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye? Merwan got: Te ji Pêxemberê Xwedê (s.) çi bihîstiye? Se‘îd got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Çi kesê bi zilm û zorê bihosteke erdê bigire, wê Xweda her heft tebeqê erdê bixe stûyê wî.” Vêca Merwan jê re got: Êdî ez piştî vê tu delîlekê ji te naxwazim. Îcar Se‘îd jî got: Xwedayo! Heger ev jinik derewker be çavê wê kor bikî û wê di erdê wê de bikujî. ‘Urwe dibêje: Ew jinik nemir heta ku çavê wê kor bûn û dema ku ew di nav erdê xwe de bi rê ve diçû kete kortikekê û mir. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

Di seneda Muslimî ji Muhemmedê kurê Zeydê kurê ‘Ebdullahê Îbnu ‘Umer bi vê maneyê: Ewî, ew jinik dît ku ew kor bûye, xwe bi dîwara digirt ku rêve here û wiha digot: Nifirê Se‘îd xenîmê min bû. Û ew jinik li ser bîra di wî xaniyê ku li ser wî xaniyê bi Se‘îd re li ber hev bû, derbas bû, kete wê bîrê û ew bîr bû gora wê.

١٥٠٨- وَعَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: لَمَّا حَضَرَتْ أُحُدٌ دَعَانِي أَبِي مِنَ اللَّيْلِ فَقَالَ: مَا أُرَانِي إِلَّا مَقْتُولاً فِي أَوَّلِ مَنْ يُقْتَلُ مِنْ أَصْحَابِ النَّبِيِّ ﷺ وَإِنِّي لَا أَتْرُكُ بَعْدِي أَعَزَّ عَلَيَّ مِنْكَ غَيْرَ نَفْسِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَإِنَّ عَلَيَّ دَيْناً فَاقْضِ، وَاسْتَوْصِ بِأَخَوَاتِكَ خَيْراً، فَأَصْبَحْنَا، فَكَانَ أَوَّلَ قَتِيلٍ، وَدَفَنْتُ مَعَهُ آخَرَ فِي قَبْرِهِ، ثُمَّ لَمْ تَطِبْ

  

نَفْسِي أَنْ أَتْرُكَهُ مَعَ آخَرَ، فَاسْتَخْرَجْتُهُ بَعْدَ سِتَّةِ أَشْهُرٍ، فَإِذَا هُوَ كَيَوْمَ وَضَعْتُهُ غَيْرَ أُذنِهِ، فَجَعَلْتُهُ فِي قَبْرٍ عَلَى حِدَةٍ. رَوَاهُ البُخَارِي.

1508-Ji Cabir Kurê 'Ebdullah (r.), got: Wextê amadeyiya herba Uhudê de bavê min bi şev gazî min kir û got: Ez qey dibêjim ku ji eshabê Pêxemberê Xwedê (s.) yê ku pêşiyê bê kuştin ez im û bêguman ez jî piştî xwe tu kesê ku li bal min ji te rêzdartir be ji xeynê Pêxemberê Xwedê (s.) nahêlim. Û li ser min hinek deyn hene tu wan deynê min bide û ez hosî û şîret li te dikim ku tu xuşk û birayê xwe re qenciyê bikî. Vêca li me bû sibeh, me dît ku ew kuştiyê yekem bû. Min şehîdekî din jî digel wî di gora wî de defin kir. Paşê dilê min rûnenişt ku ez bavê xwe digel yekî din bihêlim. Vêca min piştî şeş mehan ew derxist, min dît ku cesedê wî 'eynê wekî wê roja ku me ew gorkiribû ye û tu tiştek pê nehatiye ji xeynî guhê wî. Vêca min bavê xwe bi tenê di gorekê de danî. *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٥٠٩- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ: أَنَّ رَجُلَيْنِ مِنْ أَصْحَابِ النَّبِيِّ ﷺ خَرَجَا مِنْ عِنْدِ النَّبِيِّ ﷺ فِي لَيْلَةٍ مُظْلِمَةٍ وَمَعَهُمَا مِثْلُ المِصْبَاحَيْنِ بَيْنَ أَيْدِيهِمَا، فَلَمَّا افْتَرَقَا، صَارَ مَعَ كُلِّ وَاحِدٍ مِنْهما وَاحِدٌ حَتَّى أَتَى أَهْلَهُ. رَوَاهُ البُخَارِي مِنْ طُرُقٍ.

وَفِي بَعْضِهَا أَنَّ الرَّجُلَيْنِ: أُسيدُ بْن حُضيرٍ وعَبَّادُ بْن بِشرٍ ﷺ

1509- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku du sehabiyê Pêxember (s.) di şeveke tarî de ji cem Pêxember (s.) hatin û digel wan tiştekî wekî du çira ku pêşya wan ronahî dikirin hebû. Vêca wextê ew ji hevdu veqetiyan digel her yekî tiştekî wekî çirayê hebû ew pê dimeşiyan heta hatin bal ehlê xwe. *Buxarî ji gelek rêya rîwayet kiriye.*

Di hinek senedan de: Ew her du mirov yek Useydê kurê Hudeyr û yek ji 'Ebbade kurê Bişr bû (r.).

١٥١٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: بَعَثَ رَسُولُ اللهِ ﷺ عَشَرَةَ رَهْطٍ عَيْناً سَرِيَّةً، وَأَمَّرَ عَلَيْهِمْ عَاصِمَ بْنَ ثَابِتٍ الأَنْصَارِيَّ ﷺ فَانْطَلَقُوا حَتَّى إِذَا كَانُوا بِالْهَدْأَةِ، بَيْنَ عُسْفانَ وَمَكَّةَ، ذُكِرُوا لِحَيٍّ مِنْ هُذَيْلٍ يُقالُ لَهُمْ: بَنُو لِحْيَانَ، فَنَفَرُوا لَهُمْ بِقَرِيبٍ مِنْ مِائَةِ رَجُلٍ رَامٍ، فَاقْتَصُّوا آثَارَهُمْ، فَلَمَّا أَحَسَّ بِهِمْ عَاصِمٌ وَأَصْحَابُهُ، لَجَأُوا إِلَى مَوْضِعٍ، فَأَحَاطَ

بِهِمُ الْقَوْمُ، فَقَالُوا: انْزِلُوا، فَأَعْطُوا بِأَيْدِيكُم، وَلَكُمُ الْعَهْدُ وَالْمِيثَاقُ أَنْ لَا نَقْتُلَ مِنْكُمْ أَحَداً، فَقَالَ عَاصِمُ بْنُ ثَابِتٍ: أَيُّهَا الْقَوْمُ أَمَّا أَنَا، فَلَا أَنْزِلُ عَلَى ذِمَّةِ كَافِرٍ: اللَّهُمَّ أَخْبِرْ عَنَّا نَبِيَّكَ ﷺ فَرَمَوْهُمْ بِالنَّبْلِ فَقَتَلُوا عَاصِماً، وَنَزَلَ إِلَيْهِمْ ثَلَاثَةُ نَفَرٍ عَلَى الْعَهْدِ وَالْمِيثَاقِ، مِنْهُمْ خُبَيْبٌ، وَزَيْدُ بْنُ الدَّثِنَةِ وَرَجُل آخَرُ، فَلَمَّا اسْتَمْكَنُوا مِنْهُمْ أَطْلَقُوا أَوْتَارَ قِسِّيهِمْ، فَرَبَطُوهُم بِهَا، قَالَ الرَّجُلُ الثَّالِثُ: هَذَا أَوَّلُ الْغَدْرِ، وَاللَّهِ لَا أَصْحَبُكُمْ إِنَّ لِي بِهَؤُلَاءِ أُسْوَةً، يُرِيد الْقَتْلى، فَجَرُّوهُ وَعَالَجُوهُ، فَأَبِى أَنْ يَصْحَبَهُمْ، فَقَتَلُوهُ، وَانْطَلَقُوا بِخُبَيْبٍ، وَزَيْدِ بْنِ الدَّثِنَةِ، حَتَّى بَاعُوهُمَا بِمَكَّهَ بَعْدَ وَقْعَةِ بَدْرٍ، فَابْتَاعَ بَنُو الْحَارِثِ بْنِ عَامِرِ بْنِ نَوْفَلِ بْنِ عَبْدِ مَنَافٍ خُبَيْباً، وَكَانَ خُبَيبٌ هُوَ قَتَلَ الْحَارِثَ يَوْمَ بَدْرٍ، فَلَبِثَ خُبَيْبٌ عِنْدَهُم أَسِيراً حَتَّى أَجْمَعُوا عَلَى قَتْلِهِ، فَاسْتَعَارَ مِنْ بَعْضِ بَنَاتِ الْحَارِثِ مُوسَى يَسْتحِدُّ بها فأَعَارَتْهُ، فَدَرَجَ بُنَيٌّ لَها وَهِيَ غَافِلَةٌ حَتَّى أَتَاهُ، فَوَجَدَتْهُ مُجْلِسَهُ عَلَى فَخْذِهِ وَالْمُوسَى بِيَدِهِ، فَفزعَتْ فَزْعَةً عَرَفَها خُبَيْبٌ. فَقَالَ: أَتخْشَيْنَ أَنْ أَقْتُلَهُ؟ مَا كُنْتُ لأفعَل ذَلِكَ، قَالَتْ: وَاللَّهِ مَا رَأَيْتُ أَسِيراً خَيْراً مِنْ خُبَيبٍ، فَوَاللَّهِ لَقَدْ وَجدْتُهُ يَوْماً يَأْكُلُ قِطْفاً مِنْ عِنَبٍ فِي يَدهِ وَأَنَّهُ لمُوثَقٌ بِالْحَدِيدِ، وَمَا بِمَكَّةَ مِنْ ثَمَرَةٍ، وَكَانَتْ تَقُولُ: إِنَّهُ لَرِزقٌ رَزَقَهُ اللَّهُ خُبَيْباً، فَلَمَّا خَرَجُوا بِهِ مِنَ الْحَرَمِ لِيَقْتُلُوهُ فِي الْحِلِّ، قَالَ لَهُمْ خُبَيْبٌ: دَعُونِي أُصَلِّي رَكْعَتَيْنِ، فتَرَكُوهُ، فَرَكَعَ رَكْعَتَيْنِ، فَقَالَ: وَاللَّهِ لَوْلَا أَنْ تَحْسَبُوا أَنَّ مَا بِي جَزَعٌ لَزِدْتُ. اللَّهُمَّ أَحْصِهِمْ عَدَداً، وَاقْتُلْهُمْ بِدَداً، وَلَا تُبْقِ مِنْهُم أَحَداً، وَقَالَ:

فَلَسْتُ أُبَالِي حِينَ أُقْتَلُ مُسْلِماً * عَلَى أَيِّ جَنْبٍ كَانَ لِلَّهِ مَصْرَعِي
وَذلِكَ فِي ذَاتِ الْإِلَهِ وَإِنْ يَشَأْ * يُبَارِكْ عَلَى أَوْصَالِ شِلْوٍ مُمَزَّعِ

وَكَانَ خُبَيْبٌ هُوَ سَنَّ لِكُلِّ مُسْلِمٍ قُتِلَ صَبْراً الصَّلَاةَ، وَأَخْبَرَ: يَعْنِي النَّبِيَّ ﷺ أَصْحَابَهُ يَوْمَ

أُصِيبُوا خَبَرَهُمْ، وَبَعَثَ نَاسٌ مِنْ قُرَيْشٍ إِلَى عَاصِمِ بْنِ ثَابِتٍ حِينَ حُدِّثُوا أَنَّهُ قُتِلَ أَنْ يُؤْتَوا بِشَيءٍ مِنْهُ يُعْرَفُ، وَكَانَ قَتَلَ رَجُلاً مِنْ عُظَمَائِهِمْ، فَبَعَثَ اللَّهُ لِعَاصِمٍ مِثْلَ الظُّلَّةِ مِنَ الدَّبْرِ فَحَمَتْه مِنْ رُسُلِهِمْ، فَلَمْ يَقْدِروا أَنْ يَقْطَعُوا مِنْهُ شَيْئاً. رَوَاهُ البُخَارِي.

1510- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) deh mirov ji bo keşfê şandin (derekê) û 'Asimê kurê Sabitê Ensarî (r.) jî kir serokê wan. Wextê ew gihîştine Hed'etê ku cîhekî di neqeba 'Usfan û Mekkeyê de ye, ji aliyê muşrikan ve ji êleke Huzeyliya re ku ji wê êlê re Benû Lihyan dihate gotin, agahê van deh mirovan hatibû dayin. Vêca êla Benû Lihyan jî nêzîkî sed mirovên tîrbaz şandin û şopa wan deh mirovan dîtin. Wextê 'Asim û hevalê wî bi wan hesiyan xwe spartine cihekî da ku bikaribin xwe ji dijmin bistirînin, lêbelê ewî qewmî ewan dorpêç kirin. Mirovê êla Benû Lihyan gotin: Hûn berjêr bibin û teslîmî me bibin, em soz didin we û sond dixwin ku em tu kesî ji we nakujin. Vêca 'Asimê kurê Sabit (r.) got: Gelî qewm, ez bixwe li ser soz û zimeta gawirî berjêr nabim. Xwedayo! Tu Pêxemberê (s.) xwe bi rewşa me agahdar bikî. Vêca mirovê êla Benû Lihyan tîr avêtin û 'Asim kuştin. Li ser ehd û soza wan, sê mirov berjêrî bi bal wan bûn; ku yek ji wan Xubeyb bû, yek Zeydê kurê Desîne bû û yek jî mirovekî din ('Ebdullahê kurê Tariq) bû. Wextê gawiran pak keysa xwe bi wan anîn bi tayê kevanê xwe destê wan girêdan. Mirovê sisiyan got: Eva destpêka bêbextiyê ye, bi sond, ez hevaltiya we nakim, bêguman ev şehîdên hanê ji min re nimûne ne. Vêca ewî qewmî ew kaş kirin û dane zorê, lêbelê ew nebû hevalê wan û wan lêdan ew jî şehîd kirin. Ewan, Xubeyb û Zeydê kurê Desîne hildan birine Mekkeyê û ewana piştî herba Bedrê firotin. Lawên Harisê kurê 'Amirê kurê Newfelê kurê 'Ebdî Menaf, Xubeyb kirin. Xubeyb di herba Bedrê de Haris kuştibû. Vêca Xubeyb di destê wan de ma êsîr heta ku yekbûna wan li ser kuştina wî çêbû. Vêca ewî ji hinek keçên Benî Harisa gûzanek xwest ku pê mûyê rûvê xwe hilde, keçekê (Zeyneba keça Haris) jî bi emanetî gûzanek dayê. Demeke wê ye ku xafil bû da kurê wê jê dûrket heta ku hate bal Xubeyb. Vêca ewê lê nihêrî kurê wê li ser çoka Xubeyb e û di destê Xubeyb de jî gûzan heye. Û ew, ji bo kurê xwe pir tirsiya, Xubeyb jî bi tirsa wê hesiya û got: Tu ditirsî ku ez ewî bikujim? Ez tiştekî wisa nakim. Ew (Zeyneba keça Haris) dibêje: Min tu car êsîrekî ku ji Xubeyb xêrtir be nedîtiye. Bi sond, rojekê min ew dît ku di destê wî de wêşiyek tiriyê hebû di halê ku ew bi zincîrê hatibû zevtkirin û di Mekkeyê de jî fêkî tunebûn. Zeyneba keça Haris dibêje: Bêguman ew rizqek bû ku

Xwedê te'ala dabû Xubeyb. Vêca wextê ewan Xubeyb ji bo ku di Hill'ê de bikujin, ji herema Mekkeyê derxistin, Xubeyb ji wan re got: Min berdin da ku ez du rekat nimêj bikim. Ewan jî ew berdan, ewî du rekat nimêj kir û got: Bi sond, eger ne ji tirsa ku hûn zen bikin ku ez ji mirinê ditirsim, minê nimêja xwe dirêj bikira. Xwedayo! Tu ewan hemûyan helak bikî, tu yek bi yek ruhê wan bistînî û tu yekî ji wan sax nehêlî. Û ewî (r.) ev her du risteyên helbestî li ser xwe got:

*Ji bo min ne xem e, ger bi misilmanî bêm kuştin,*
*Li ser çi rewşê dibe bila bibe, ji Xwedê re ye mirina min,*
*Ev bindestî û tengasiya min ji zatê Xwedê re ye. Heger ew hez bike,*
*dê movikên laşê rizî jî mubarek bike.*

Xubeyb e yê ku nimêj kiriye 'edet ji temamê misilmanê ku bi berdarî bên kuştin. Pêxember (s.) jî roja ku Xubeyb û bi hevalê xwe re xwedanqeda û musibet bûn agaha wan ji sehabê xwe re digot. Wextê Qureyşî pê hesiyan ku 'Asimê kurê Sabit hatiye kuştin hinek mirov şandine bal cesedê wî ku ji cesedê wî (r.) qetekî bînin ku pê nas bikin, lewra 'Asim mezinekî wan kuştibû (ku 'Uqbeyê kurê Mu'eyt e). Vêca Xwedê te'ala keriyekî moza wekî ewrekî şand ji bona parastina 'Asim ji qasidê Qureyşiyan. Vêca ewan nekarîn ku tiştekî ji cesedê wî jêbikin. Buxarî rîwayet kiriye.

١٥١١ - وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: مَا سَمِعْتُ عُمَرَ ﷺ يَقُولُ لِشَيْءٍ قَطُّ: إِنِّي لَأَظُنُّهُ كَذَا إِلَّا كَانَ كَمَا يَظُنُّ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1511- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Min ji Hz. 'Umer (r.) nebihîstiye ku ewî derbarê çi tiştî de bigota: 'Ez qey dibêjim ku ev tişt wê wiha be.' Miheqeq ewê wekî zenna Hz. 'Umer (r.) bûya. Buxarî rîwayet kiriye.

# كِتَاب الأُمُور الْمُنْهي عَنْهُ
# KITÊBA KARÊN QEDEXEKIRÎ

## بَابُ تَحْرِيم الْغَيْبَة وَالأَمْر بِحفْظ اللِّسَان
## HERAMBÛNA XEYBETÊ/PAŞGOTINIYÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَلَا يَغْتَبْ بَعْضُكُمْ بَعْضاً أَيُحِبُّ أَحَدُكُم أَنْ يَأْكُلَ لَحْمَ أَخِيهِ مَيْتاً فَكَرِهْتُمُوهُ وَاتَّقُوا اللَّهَ إِنَّ اللَّهَ تَوَّابٌ رَحِيمٌ﴾

"Xeybeta hevdu nekin. Qey yek ji we dixwaze goştê birayê xwe yê mirî bixwe? Ha hûn ji vê bizî dikin. Ji Xwedê bitirsin. Bi rastî Xweda tobewergir e, dilovan e."[1]

﴿وَلَا تَقْفُ مَا لَيْسَ لَكَ بِهِ عِلْمٌ إِنَّ السَّمْعَ وَالْبَصَرَ وَالْفُؤَادَ كُلُّ أُولَئِكَ كَانَ عَنْهُ مَسْئُولا﴾

"Tiştê tu çi jê nezanî li dûv neçe. Bi rastî guh, çav û dil hemû ji wê berpirs e."[2]

﴿مَا يَلْفِظُ مِنْ قَوْلٍ إِلَّا لَدَيْهِ رَقِيبٌ عَتِيدٌ﴾

---

1 Hucurat, 49/12.
2 Îsra, 17/36.

“Însan tu axaftinan nake (çi baş çi xerab), ku milyaketekî karkerî û zêrevanî digel wî nebe (û wê axaftinê nenivîse.)”[1]

اِعْلَمْ أَنَّهُ لِكُلِّ مُكَلَّف أَنْ يَحْفَظَ لِسَانَهُ عَنْ جَمِيعِ الْكَلَامِ إِلَّا كَلاماً ظَهَرَتْ فِيهِ الْمَصْلَحَةُ، وَمَتَى اِسْتَوَى الْكَلَامُ وَتَرْكُهُ في الْمَصْلَحَةِ فَالسُّنَّةُ الإِمْسَاكُ عَنْهُ لِأَنَّهُ قَدْ يَنْجَرُّ الْكَلَامُ الْمُبَاحُ إِلَى حَرَامٍ أَوْ مَكْرُوهٍ، وَذَلِكَ كَثِير فِي الْعَادَةِ، وَالسَّلَامَةُ لَا يَعْدِلُهَا شَيء.

Tu agahdar be: Ey birayê misilman layiq û babetê her kesê mukellef e ku ji bilî axaftina meslehet tê de heye, xwe ji hemû axaftinan biparêze. Çi wextê axaftin û neaxaftin bûne wekî hev ya sunnet û pak neaxaftine. Lewra bêşik hindek caran axaftina mubah û helal dikêşê bi bal heramê ve yan jî bi bal mekrûhê ve ew yek di adetê de pir e. Bêguman tiştek beranberî selametê nagire.

١٥١٢- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَاليَوْمِ الآخِرِ، فَلْيَقُلْ خَيْراً، أَوْ لِيَصْمُتْ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1512- Ji Ebû Hureyre (r.) ji Pêxember (s.) gotiye: “Kesê bawerî bi Xwedê û roja axîretê anîbe bila yan xêrê bêje û yan jî bila neaxive.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥١٣- وَعَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ قَالَ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَيُّ الْمُسْلِمِينَ أَفْضَلُ؟ قَالَ: (مَنْ سَلِمَ الْمُسْلِمُونَ مِن لِسَانِهِ وَيَدِهِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1513- Ji Ebû Mûsa (r.), got: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Kîjan musluman herî qence? Ewî (s.) got: “Kesê ku misilman ji ziman û destê wî bi ewle bin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥١٤- وَعَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ يَضْمَنْ لِي مَا بَيْنَ لَحْيَيْهِ وَما بَيْنَ رِجْلَيْهِ أَضْمنْ لَهُ الجَنَّةَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1514- Ji Sehlê kurê Se‘d (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kê ewleyî û temînata navbera her du lamên xwe (ku ziman e) û navbera her

1 Qaf, 50/18.

  

du piyên xwe (ku 'ewret e) bide min, ezê jî ewleyiya cennetê bidime wî."
*Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥١٥ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ العَبْدَ لَيَتَكَلَّمُ بِالْكَلِمَةِ مَا يَتَبَيَّنُ فِيهَا، يَزِلُّ بِهَا إِلَى النَّارِ أَبْعَدَ مِمَّا بَيْنَ الْمَشْرِقِ وَالْمَغْرِبِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1515- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Pêxember (s.) bihîstiye ku wiha digot: "Bêguman 'ebdek bêraman peyvikekê dibêje ku bi sedem wê peyvikê dikeve tebeqeke cehennemê wisa ku dûrtir e (kûrtir e) ji neqeba rojhilat û rojavayê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥١٦ - وَعَنْهُ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ الْعَبْدَ لَيَتَكَلَّمُ بِالْكَلِمَةِ مِن رِضْوَانِ اللَّهِ تَعَالَى مَا يُلْقِي لَهَا بَالاً يَرْفَعُهُ اللَّهُ بِهَا دَرَجَاتٍ، وَإِنَّ الْعَبْدَ لَيَتَكَلَّمُ بِالْكَلِمَةِ مِن سَخَطِ اللَّهِ تَعَالَى لَا يُلْقِي لَهَا بَالاً يَهْوِي بِهَا فِي جَهَنَّمَ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1516- Dîsa ji wî (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Bêguman 'ebdek peyvikekê ku Xwedê pê razî dibe dibêje û tu hêviyê jî jê nakî, belê bi sedem wê peyvikê Xwedê dereca wî ya di cennetê de bilind dike. Û ebdek jî peyvikekê ku dibe sedemê xeyda Xwedê û tu hêviya xirabûnê jî jê nakî dibêje, lêbelê bi sedem wê peyvikê Xwedê ewî berjêrî binê cehennemê dike." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٥١٧ - وَعَنْ أَبِي عَبْدِ الرَّحْمَنِ بِلَالِ بْنِ الْحَارِثِ الْمُزَنِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (إِنَّ الرَّجُلَ لَيَتَكَلَّمُ بالْكَلِمَةِ مِنْ رِضْوانِ اللَّهِ تَعَالَى مَا كَانَ يَظُنّ أَنْ تَبْلُغَ مَا بَلَغَتْ يَكْتُبُ الله لَهُ بِهَا رِضْوَانَهُ إِلَى يَوْمِ يَلْقَاهُ، وَإِنَّ الرَّجُلَ لَيَتَكَلَّمُ بِالْكَلِمَةِ مِنْ سَخَطِ اللَّهِ مَا كَانَ يَظُنُّ أَنْ تَبْلُغَ مَا بَلَغَتْ يَكْتُبُ الله لَهُ بِهَا سَخَطَهُ إِلَى يَوْمِ يَلْقَاهُ). رَوَاهُ مَالِك فِي المُوَطَّأ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1517-Ji Ebû 'Ebdurrehman Bilalê kurê Harisê Muzenî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Bêguman mirovek peyvikeke rewayê rizaya Xwedê, lê nizane jî ka wê bigihêje kuderê, dibêje bi sedem wê peyvikê Xwedê rizaya xwe ji bo wî ferz dike heta roja ku ew kes lîqayê Xwedê be. Û mirovek jî peyvikeke ku dibe sedemê xeyda Xwedê,

lê nizane jî ka wê bigihêje kuderê, dibêje bi sedem wê peyvikê jî Xweda xezeba xwe li ser wî ferz dike heta roja ku ew kes lîqayî Xwedê be." *Malik di Muwettayê de rîwayet kiriye. Tirmizî jî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

١٥١٨ – وَعَنْ سُفْيَانَ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: قُلْتُ يا رَسُولَ اللَّهِ حَدِّثْنِي بِأَمْرٍ أَعْتَصِمُ بِهِ، قَالَ: (قُلْ رَبِيَ الله، ثُمَّ اسْتَقِمْ) قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ مَا أَخْوَفُ مَا تَخَافُ عَلَيَّ؟ فَأَخَذَ بِلِسَانِ نَفْسِهِ، ثُمَّ قَالَ: (هَذَا). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1518- Ji Sufyanê kurê 'Ebdullah (r.), got: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu ji min re kar û kiryarekî ku ez xwe pê bigrim bibêjî. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu bêje: Rebbê min Xwedê ye. Paşê jî tu rasterast be." (Sufyan dibêje) Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Di derbarê min de tişta ku tu zehftir jê ditirsî çi ye? Pêxemberê Xwedê (s.) jî bi zimanê xwe girt û paşê jî got: "Aha ev e." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

١٥١٩ – وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تُكْثِرُوا الْكَلَامَ بِغَيْرِ ذِكْرِ اللَّهِ، فَإِنَّ كَثْرَةَ الْكَلَامِ بِغَيْرِ ذِكْرِ اللَّهِ تَعَالَى قَسْوَةٌ لِلْقَلْبِ وَإِنَّ أَبْعَدَ النَّاسِ مِنَ اللَّهِ الْقَلْبُ الْقَاسِي). رَوَاهُ التِّرمِذِي.

1519- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Hûn, ji xêncî zikrê Xwedê, pir neaxivin. Lewra zikrê Xwedê xaric, axaftina zehf ji dil re hişkbûn e. Bêguman dûrtirînê însanan ji Xwedê jî mirovên dilhişk in." *Tirmizî rîwayet kiriye.*

١٥٢٠ – وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ وَقَاهُ الله شَرَّ مَا بَيْنَ لَحْيَيْهِ، وَشَرَّ مَا بَيْنَ رِجْلَيْهِ دَخَلَ الْجَنَّةَ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1520- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê ku Xwedê te'ala, ewî ji xerabiya navbera her du lamên wî û her du piyên wî biparêze de ew kes têkeve cennetê." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

١٥٢١ – وَعَنْ عُقْبَةَ بْنِ عَامِرٍ ﷺ قَالَ: قُلْتُ يَا رَسُولَ الله مَا النَّجَاةُ؟ قَالَ: (أَمْسِكْ عَلَيْكَ لِسَانَكَ، وَلْيَسَعْكَ بَيْتُكَ، وَابْكِ عَلَى خَطِيئَتِكَ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1521- Ji 'Uqbeyê kurê 'Amir (r.), got: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Rêya xelasiyê çi ye? Ewî (s.) got: "Tu zimanê xwe bistirîne, bila mala te ji te re fireh be û tu li ser şaşî û gunehê xwe bigrî." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

١٥٢٢ - وَعَنْ أَبِي سَعِيدِ الْخُدْرِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِذَا أَصْبَحَ ابْنُ آدَمَ، فَإِنَّ الأَعْضَاءَ كُلَّهَا تُكَفِّرُ اللِّسَانَ، تَقُولُ: اتَّقِ اللَّهَ فِينَا، فَإِنَّمَا نَحْنُ بِكَ، فَإِنِ اسْتَقَمْتَ اسْتَقَمْنَا، وَإِنِ اعْوَجَجْتَ اعْوَجَجْنَا). رَوَاهُ التِّرْمِذِي.

1522- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê li însanî bû sibeh temamê parçeyên canê wî xwe ji ziman re ditewînin û dibêjin: Zimano! Tu derbarê mafê me de ji Xwedê bitirse, lewra bêguman em peyrewê te ne; eger tu rast bî emê jî rast bin û eger tu xwar bî emê jî xwar bin." *Tirmizî riwayet kiriye.*

١٥٢٣ - وَعَنْ مُعَاذٍ ﷺ قَالَ: قُلْتُ يَا رَسُولَ اللَّهِ أَخْبِرْنِي بِعَمَلٍ يُدْخِلُنِي الْجَنَّةَ، وَيُبَاعِدُنِي مِنَ النَّارِ؟ قَالَ: (لَقَدْ سَأَلْتَ عَنْ عَظِيمٍ، وَإِنَّهُ لَيَسِيرٌ عَلَى مَنْ يَسَّرَهُ اللَّهُ تَعَالَى عَلَيْهِ: تَعْبُدُ اللَّهَ لَا تُشْرِكُ بِهِ شَيْئاً، وَتُقِيمُ الصَّلَاةَ، وَتُؤْتِي الزَّكَاةَ، وَتَصُومُ رَمَضَانَ، وَتَحُجُّ الْبَيْتَ) ثُمَّ قَالَ: (أَلَا أَدُلُّكَ عَلَى أَبْوَابِ الْخَيْرِ؟ الصَّوْمُ جُنَّةٌ، وَالصَّدَقَةُ تُطْفِئُ الْخَطِيئَةَ كَمَا يُطْفِئُ الْمَاءُ النَّارَ، وَصَلَاةُ الرَّجُلِ مِنْ جَوْفِ اللَّيْلِ) ثُمَّ تَلَا: (تَتَجَافَى جُنُوبُهُم عَنِ الْمَضَاجِعِ) حَتَّى بَلَغَ (يَعْمَلُونَ السَّجْدَة١٦-١٧) ثُمَّ قَالَ: (أَلَا أُخْبِرُكَ بِرَأْسِ الأَمْرِ، وَعَمُودِهِ، وَذِرْوَةِ سَنَامِهِ) قُلْتُ: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: (رَأْسُ الأَمْرِ الإِسْلَامُ، وَعَمُودُهُ الصَّلَاةُ، وَذِرْوَةُ سَنَامِهِ الْجِهَادُ) ثُمَّ قَالَ: (أَلَا أُخْبِرُكَ بِمِلَاكِ ذَلِكَ كُلِّهِ؟ قُلْتُ: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ، فَأَخَذَ بِلِسَانِهِ قَالَ: (كُفَّ عَلَيْكَ هَذَا) قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ وَإِنَّا لَمُؤَاخَذُونَ بِمَا نَتَكَلَّمُ بِهِ؟ فَقَالَ: (ثَكِلَتْكَ أُمُّكَ، وَهَلْ يَكُبُّ النَّاسَ فِي النَّارِ عَلَى وُجُوهِهِمْ إِلَّا حَصَائِدُ أَلْسِنَتِهِمْ؟).

رَوَاهُ التِّرْمِذِي وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1523- Ji Mu'az (r.), got: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Tu kar û kiryarekî

wisa ji min re bibêjî ku min bibe cennetê û ji êgir jî min dûr bike. Ewî (s.) got: “Te pirseke pir mezin kir. Û digel vê, ew hêsan e li ser kesê ku Xwedê te‘ala li ser wî hêsan kiriye: Tu îbadetê Xwedê te‘ala bikî û tu tiştekî nexî şirîk ji wî re, nimêj bikî, zekatê bidî, rojiya meha Remezanê bigrî û heccê bikî.” Paşê jî got: “Ez nîşanî te bidim rêyên xêrê? Rojî mertal e, sedeqe guneha ditemirîne çawa ku av êgir ditemirîne û yek jî nimêjkirina mêrik e di nîvê şevê de.” Paşê ev ayet xwend: “Kêlekê wan ji nivînê wan dûrdikevin...” heta gihîşte qewlê Xwedê te‘ala “Ye‘melûne (ew dikin)” û paşê jî got: “Ma ez te agahdar bikim bi serê emir, stûna wî û zîrweya wî ya bilind?” Min got: Belê, ya Pêxemberê Xwedê! Ewî (s.) got: “Serê her emrî Îslam e, stûna wî nimêj e û zîrweya wî ya bilind jî cîhad e.” Paşê jî got: “Ez te agahdar bikim bi wî emrê ku ciyê evan hemûkî bigire?” Min got: Belê, ya Pêxemberê Xwedê! Pêxemberê Xwedê (s.) bi zimanê xwe girt û got: “Tu zimanê xwe ji xerabiyê vegirî.” Vêca min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Emê ji zimanê xwe jî bêne pirsiyar kirin? Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Hey belqityo! Ma qey ew tiştê ku însanan sernixûn davêje êgir, bes ne ber û mehsûlê zimanê wan e?” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١٥٢٤- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (أَتَدْرُونَ مَا الْغِيبَةُ؟) قَالُوا: اللَّهُ وَرَسُولُهُ أَعْلَمُ، قَالَ: (ذِكْرُكَ أَخَاكَ بِمَا يَكْرَهُ) قِيلَ: أَفَرَأَيْتَ إِنْ كَانَ فِي أَخِي مَا أَقُولُ؟ قَالَ: (إِنْ كَانَ فِيهِ مَا تَقُولُ، فَقَدِ اغْتَبْتَهُ، وَإِنْ لَمْ يَكُنْ فِيهِ مَا تَقُولُ فَقَدْ بَهَتَّهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1524- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Hûn dizanin ka xeybet çi ye?” Eshaban gotin: Xwedê û Pêxemberê wî çêtir dizanin. Ewî (s.) got: “Tu behsa birayê xwe yê nehazir bikî bi tiştekî ku ew jê hez nake.” Li ser vê yekê hate gotin: Lê eger ew tiştê ku em dibêjin di wî birayê me de hebe ew çawa ye? Pêxemberê Xwedê (s.) got: Ew tiştê ku tu dibêjî eger di wî de hebe bêguman te xeyb/xeybeta wî kiriye, lê ew tiştê ku tu dibêjî eger di wî de tunebe bêguman wî çaxî jî te îftîra li wî kiriye.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٢٥- وَعَنْ أَبِي بَكْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ فِي خُطْبَتِهِ يَوْمَ النَّحْرِ بِمِنًى فِي حَجَّةِ الْوَدَاعِ: (إِنَّ دِمَاءَكُمْ، وَأَمْوَالَكُمْ، وَأَعْرَاضَكُمْ، حَرَامٌ عَلَيْكُمْ كَحُرْمَةِ يَوْمِكُم هَذَا، فِي شَهْرِكُمْ هَذَا، فِي بَلَدِكُمْ هَذَا، أَلَا هَلْ بَلَّغْتُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1525- Ji Ebû Bekire (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) di xutba xwe ya roja ‘eyda Qurbanê li Mînayê, di sala Heccetul-Weda‘de wiha got: “Bêguman xûn, mal û namûsa we li ser we heram in wekî hurmeta vê roja we ya di vê meha we û di vî bajarê we de. Hûn şahid bibin ku min teblîx kir.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٢٦- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: قُلْتُ لِلنَّبِيِّ ﷺ حَسْبُكَ مِنْ صَفِيَّةَ كَذَا وَكَذَا، قَالَ بَعْضُ الرُّوَاةِ: تَعْنِي قَصِيرَةً، فَقَالَ: (لَقَدْ قُلْتِ كَلِمَةً لَوْ مُزِجَتْ بِمَاءِ الْبَحْرِ لَمَزَجَتْهُ) قَالَتْ: وَحَكَيْتُ لَهُ إِنْسَاناً فَقَالَ: (مَا أُحِبُّ أَنِّي حَكَيْتُ إِنْسَاناً وَأَنَّ لِي كَذَا وَكَذَا). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1526- Ji ‘Aîşe (r.), got: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Wiha wihabûna Safiyayê (hinek rawî dibêjin qesda kurtbûna wê dike) besî te ye. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Ey ‘Aîşe! Bêguman te peyveke wisa got eger ew peyv tevlî behrê bibe wê ava behrê şêlî bike.” Hz. ‘Aîşe (r.) dibêje: Dîsa min rojekê behsa însanekî ji Pêxemberê Xwedê (s.) re kir. Vêca ewî (s.) got: “Di beramberî wê de dunyayê jî bidine min ez qet hez nakim ku behsa însanekî ji min re bi şiklekî wisa ku ew pê kêfxweş nîne bê dayin.” *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١٥٢٧- وَعَنْ أَنَسٍ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ (لَمَّا عُرِجَ بِي مَرَرْتُ بِقَوْمٍ لَهُمْ أَظْفَارٌ مِنْ نُحَاسٍ يَخْمِشُونَ وجُوهَهُمْ وَصُدُورَهُمْ، فَقُلْتُ: مَنْ هَؤُلَاءِ يَا جِبْرِيلُ؟ قَالَ: هَؤُلَاءِ الَّذِينَ يَأْكُلُونَ لُحُومَ النَّاسِ، وَيَقَعُونَ فِي أَعْرَاضِهِمْ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ.

1527- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê ez çûme Mî‘racê, ez di ber qewmekî re derbas bûm ku neynûkên wan ji sifir bûn û bi wan neynûkan rû û sînga xwe dixermişandin. Min got: Ya Cibrîl! Ev çi kes in? Ewî got: Ev, ew kesên ku di dunyayê de goştê însanan dixwarin (yanî xeybet dikirin) û têkilê şeref û namûsa wan dibûn.” *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

١٥٢٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﵁ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (كُلُّ الْمُسْلِمِ عَلَى الْمُسْلِمِ حَرَامٌ: دَمُهُ وَعِرْضُهُ وَمَالُهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1528- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Temamê van tiştên misilmanî li ser misilmanî heram e: Xûna wî, namûsa wî û malê wî." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَحْرِيم سمَاع الْغيبَة
## HERAMBÛNA GUHDARÎKIRINA XEYBETÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَإِذَا سَمِعُوا اللَّغْوَ أَعْرَضُوا عَنْهُ﴾

"Dema ew guh li qise û gotinên seqet û şikestî dikin pişta xwe didine wan."[1]

﴿وَالَّذِينَ هُمْ عَنِ اللَّغْوِ مُعْرِضُونَ﴾

"Ewê pişta wan li gotin û kiryarê pûç in (û xwe jê didine paş)."[2]

﴿إِنَّ السَّمْعَ وَالْبَصَرَ وَالْفُؤَادَ كُلُّ أُولَٰئِكَ كَانَ عَنْهُ مَسْئُولًا﴾

"Bi rastî guh, çav û dil hemû ji kirinên xwe berpirsiyar in."[3]

﴿وَإِذَا رَأَيْتَ الَّذِينَ يَخُوضُونَ فِي آيَاتِنَا فَأَعْرِضْ عَنْهُمْ حَتَّىٰ يَخُوضُوا فِي حَدِيثٍ غَيْرِهِ وَإِمَّا يُنْسِيَنَّكَ الشَّيْطَانُ فَلَا تَقْعُدْ بَعْدَ الذِّكْرَىٰ مَعَ الْقَوْمِ الظَّالِمِينَ﴾

"Her gava ku te ew dîtin ew tinazên xwe bi ayetên me dikin, rûyê xwe ji wan wergir e (û digel wan rûnene) heta ku ew neçine sohbeteke din. Vêca eger şeytan ji bîra te bir, piştî bîrhatinê tu li cem sîtemkaran rûnene."[4]

١٥٢٩ - وَعَنْ أَبِي الدَّرْدَاءِ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَنْ رَدَّ عَنْ عِرْضِ أَخِيهِ، رَدَّ الله عَنْ وَجْهِهِ النَّارَ يَوْمَ القِيَامَةِ). رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1529- Ji Ebû Derda (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Kî şeref û namûsa birayê xwe biparêze wê Xwedê jî roja qiyametê ewî ji êgir biparêze." *Tirmizi rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

---

1 Qeses, 28/55.
2 Mu'minûn, 23/3
3 Îsra, 17/36.
4 En'am, 6/68.

  

١٥٣٠- وَعَنْ عِتْبَانَ بْنِ مَالِكٍ ﷺ فِي حَدِيثِهِ الطَّوِيلَ المَشْهُورِ الَّذِي تَقَدَّمَ فِي بَابِ الرَّجَاءِ، قَالَ: قَامَ النَّبِيُّ ﷺ يُصَلِّي فَقَالَ: (أَيْنَ مَالِكُ بْنُ الدُّخْشُمِ؟) فَقَالَ رَجُلٌ: ذَلِكَ مُنَافِقٌ لَا يُحِبُّ الله ولَا رَسُولَهُ، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (لَا تَقُلْ ذَلِكَ أَلا تَرَاهُ قَدْ قَالَ: لَا إِلَهَ إِلَّا الله يُرِيدُ بِذَلِكَ وَجْهَ الله، وَإِنَّ اللَّهَ قَدْ حَرَّمَ عَلَى النَّارِ مَنْ قَالَ لَا إِلَهَ إِلَّا الله يَبْتَغِي بِذَلِكَ وَجْهَ اللَّهِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1530- Ji ‘Itbanê kurê Malik (r.), di hedîsa wî ya dirêj û meşhûr ku di behsa hêvîdariyê de derbas bûye, hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) rabû ku nimêj bike, vêca got: “Malikê kurê Duxşum li kuderê ye?” Mirovekî jî got: Ew munafiq e, ji Xwedê û Pêxemberê wî heznake. Li ser vê gotinê Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Tu wisa nebêje, qey tu nizanî ku wî gotiye la îlahe îllellah û bi vê jî qesd û niyeta wî razîbûna Xwedê ye? Û bêguman Xweda ‘ezze we celle li ser wî kesê ku bêje *la îlahe îllellah* û qesd û niyeta wî jî bi vê yekê razîbûna Xwedê be, agir heram kiriye.” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٥٣١- وَعَنْ كَعْبِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ فِي حَدِيثِهِ الطَّوِيلِ فِي قِصَّةِ تَوْبَتِهِ وَقَدْ سَبَقَ فِي بَابِ التَّوْبَةِ، قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ وَهُوَ جَالِسٌ فِي الْقَوْمِ بِتَبُوكَ: (مَا فَعَلَ كَعْبُ بْنُ مَالِكٍ؟) فَقَالَ رَجُلٌ مِنْ بَنِي سَلَمَةَ: يَا رَسُولَ الله، حَبَسَهُ بُرْدَاهُ، وَالنَّظَرُ فِي عِطْفَيْهِ، فَقَالَ لَهُ مُعَاذُ بْنُ جَبَلٍ ﷺ: بِئْسَ مَا قُلْتَ، وَاللَّهِ يَا رَسُولَ الله مَا عَلِمْنَا عَلَيْهِ إِلَّا خَيْراً، فَسَكَتَ رَسُولُ الله ﷺ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1531- Ji Ke‘bê kurê Malik (r.), di hedîsa wî ya dirêj a di behsa toba wî de di babê tobê de derbas bûye, got: Pêxember (s.), li Tebûkê di nav sehabiyan de rûniştibû, got: “Kanî Ke‘bê kurê Malik?” Mirovekî ji êla Benî Seleme got: Ya Pêxemberê Xwedê! Kurk û ‘ebayê wî û li her du sermilên xwe nihêrîna wî nehêla ku ew were beşdarê herbê bibe. Vêca Mu‘azê kurê Cebel (r.) parastin û mudafe‘a min kir û got: Te derbarê Ke‘b de nebaş axaft. Bi sond, ya Pêxemberê Xwedê! Em Ke‘b mirovekî baş dizanin. Pêxemberê Xwedê (s.) dengê xwe nekir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ مَا يُبَاح مِنَ الْغِيبَةَ
## XEYBETA HELAL

اِعْلَمْ أَنَّ الْغِيبَةَ تُبَاحُ لِغَرَضٍ صَحِيحٍ شَرْعِيٍّ لَا يُمْكِنُ الْوصُولُ إِلَيْهِ إِلَّا بِهَا، وَهُوَ بِستَّة أَسْبَابٍ:

**الْأَوَّلُ**: التَّظَلُّمُ فَيَجُوزُ لِلمَظْلُومِ أَنْ يَتظَلَّمَ إِلَى السُّلْطَانِ وَالْقَاضِي وَغَيْرِهمَا مِمَّنْ لَهُ وِلَايَة أَوْ قُدْرَة عَلَى إِنْصَافِهِ، فيَقُولُ: ظَلَمَنِي فُلَان بِكَذَا.

**الثَّانِي**: اَلإِسْتِعَانَةُ عَلَى تَغْيِيرِ الْمُنْكرِ وَرَدِّ الْعَاصِي إِلَى الصَّوَابِ، فيَقُولُ لِمَنْ يَرْجُو قدْرَتهُ عَلَى إِزَالَةِ الْمُنْكرِ: فَلَان يَعْمَلُ كَذَا فَازْجرهُ عَنْهُ وَنَحوُ ذَلِكَ، وَيكُونَ مَقْصُودهُ التَّوَصُّلَ إِلَى إِزَالَةِ الْمُنْكرِ، فَإِنْ لَمْ يقْصدِ ذَلِك كَانَ حَرَاماً.

**الثَّالِثُ**: الإِسْتفْتَاءُ فيَقُولُ لِلْمُفْتِي: ظَلَمَنِي أَبِي أَوْ أَخِي أَوْ زَوْجِي أَوْ فُلَان بِكَذَا، فَهَلْ لَهُ ذَلِكَ، وَمَا طَرِيقِي فِي الْخَلَاصِ مِنْهُ وَتَحْصِيلِ حَقِّي، وَدَفْعِ الظُّلْمِ، وَنَحْو ذَلِكَ، فَهَذَا جَائِز لِلْحَاجَةِ، وَلَكِنْ الأَحْوَطْ وَالأَفْضَل أَنْ يَقُولُ: مَا تَقُولُ فِي رَجُل كَانَ مِنْ أَمْرِهِ كَذَا.

**الرَّابِع**: تَحْذِير الْمُسْلِمِينَ مِنَ الشَّرِّ وَنَصِيحَتهِمْ، وَذَلِكَ مِنْ وُجُوهٍ: مِنْهَا جرحُ الْمَجْرُوحِينَ مِنَ الرُّوَاةِ والشُّهُودِ، وَذَلِكَ جَائِز بِإِجْمَاعِ الْمُسْلِمِينَ، بَلْ وَاجِب لِلْحَاجَةِ، وَمِنْهَا الْمُشَاوَرَةُ فِي مُصَاهَرةِ إِنْسَانٍ أَوْ مُشَارِكتِهِ أَوْ إِيدَاعِهِ أَوْ مُعَامَلَتِهِ بِغَيْرِ ذَلِكَ أَوْ مُجَاوَرَته. وَيَجِبُ عَلَى الْمُشَاوِرِ أَنْ لَا يخْفِي حَالهُ، بَلْ يذْكرُ الْمَسَاوِئ الَّتِي بِنِيَّةِ النَّصِيحَةِ. وَمِنْهَا إِذَا رَأى مُتَفَقِّهاً يَتَرَدَّدُ إِلَى مُبْتَدِعٍ أَوْ فَاسِقٍ يَأْخُذُ عَنْهُ الْعِلْمَ، وَخَافَ أَنْ يَتَضَرَّرَ الْمُتَفَقِّه بِذَلِكَ فعَلَيْهِ بِبَيَانِ حَالِهِ بِشَرْطِ أَنْ يقْصدَ النَّصِيحَةَ، وَمِنْهَا أَنْ يَكُون لَهُ وِلَايَة لَا يَقُوم بِهَا عَلَى وَجْهِهَا: إِمَّا بِأَنْ لَا يَكُونَ صَالِحاً لَهَا، وَإِمَّا بِأَنْ يَكُونَ فَاسِقاً أَوْ مُغفلاً وَنَحْو ذَلِكَ، فَيَجِبُ ذِكْرُ ذَلِكَ لِمَنْ لَهُ عَلَيْهِ ولَايَة لِيزِيلهُ.

**الْخَامس**: أَنْ يَكُون مُجَاهِراً بِفسْقِهِ أَوْ بِدْعَتِهِ، كَالْمُجَاهِرِ بِشُرْبِ الْخَمْرِ وَمُصَادَرَةِ النَّاسِ، وَأَخْذِ الْمكسِ وَجِبَايَةِ الأَمْوَالِ ظُلْماً، وَتَوَلِّي الأمُورِ الْبَاطِلَةِ، فَيَجُوزُ ذِكْرُهُ بِمَا يجَاهِرُ بِهِ، وَيحرمُ ذِكْرهُ بِغَيْرِهِ مِنَ الْعُيُوب.

**السَّادِسِ**: التَّعْرِيفُ، فَإِذَا كَانَ الإِنْسَانُ مَعْرُوفاً بِلَقَبٍ: كَالأَعْمَشِ وَالأَصَم وَالأَعْمَى وَالأَحْوَلِ وَغَيْرِهِمْ جَازَ تَعْرِيفهمْ بِذَلِكَ، وَيحرمُ إِطْلاَقُهُ عَلَى جِهَةِ التَّنْقِيصِ، وَلَوْ أمْكنَ تَعْرِيفهُ بِغَيْرِ ذَلِكَ كَانَ أَوْلَى.

فَهَذِهِ ستَّة أَسْبَابٍ ذَكَرَهَا الْعُلَمَاءَ، وَأَكْثرهَا مجمع عَلَيْهِ، وَدَلاَئِلهَا مِنَ الأَحَادِيثِ الصَّحِيحَةِ مَشْهُورَة، فَمِنْ ذَلِكَ:

Tu bizanî ku xeybet helal dibe bi sedem meqsed û mebesteke şer'î ku ji xeynê xeybetê tu îmkana gihîştina bal wê ve tune be. Ew jî şeş sedem in:

Yekem: Şikayet û gilîkirina sîtemkare. Dirust e ji sîtembar/mezlûmî re şikayetê sîtemkar li bal sultan, qazî û bal xeynê van jî ji wan kesên ku dikarin mafê sîtembarî ji sîtemkarî bistînin bike. Sîtembar dikare bêje: Filan kesê bi vî awayî neheqî li min kir.

Duyem: Ew xeybeta bibe sebebê xerabkirina tiştê bêcih û vegerandina gunehkariyê bi bal rêya rast ve. Vêca mirov dikare bêje ji wî kesê ku dikare tiştê xerab tune bike: Filan mirovî ev tiştê xerab dike û tu ewî ji wî kar û kiryarê dûr bike. Divê meqsed û mebesta wî tunekirina xerabiyê be, eger mebest ev nebe wî çaxî ew xeybet e û heram e.

Sêyem: Daxwaza fetwayê ye. Mesela yek ji miftî re bêje: Bavê min yan apê min yan birayê min yan mêrê min yan filan kesê zilm û sîtem li min kir. Ka ev kirin ji wî re helal e? Ezê çawa jê xelas bibim, mafê xwe çawa jê bistînim û ezê zilm û sîtemê çawa ji xwe dûr bikim? hwd. Ev awayê xeybetê ji ber hewcedariyê caiz e. Lê ya baş û ya çêtir bê nav-anîn gotin e, mesela bêje: Tu derbarê mirovekî ku wiha kiribe çi dibêjî?

Çarem: Hişyarkirina misilmana ji xerabiyê ye û şîret li wan kirin e. Ev jî bi çend awayan e:

Yek ev e: Rapordayina li ser kêmasiya rawî û şahidê ku kêmasî di 'edalet û zebta wan de heye. Eva bi yekbûn û îttifaqa temamê misilmana caiz e, heta ji ber hewcedariyê wacib e.

Yek jî ev e: Şêwra di derbarê xinamîtî yan hevparî yan emanetdayinê

  

yan kirarî bi însanekî re yan jî derbarê xeynê ji evan cihan yekî de yan jî di derbarê cîrantiyê de ye. Vêca wacib e li ser wî kesê ku şêwr pê tê kirin hal û rewşa wî mirovê ku rewşa wî tê pirsîn, veneşêre. Belkî divê ku kêmasiyê hene bi awayê şîret bêje.

Yek jî ev e: Wextê yekî, xwendevanek dît ku diçe bal mirovê xwedî bid'e û mirovê fasiq ku 'ilmê ji wan hîn bibe û tirsiya ku xwendevan ji vê yekê zerar bibîne, wî çaxî wacib e li ser wî mirovî şîretan li xwendevanî bike bi rewşa ewanê xwedî bid'e û xwedî fisq. Lê bi şertê ku mebesta wî şîret be.

Yek jî ev e: Mirovê ku jê re serwerî heye di kar û kiryarekê de: Yan bi kêrî wî karî nayê yan fasiq e yan hişsivik e hwd. Vêca wacib e evê rewşa wî ji wî kesê ku jê re serweriya gelemperî heye re bêje ku ewê rewşa wê tune bike.

Pêncem: Kesê xeybeta wî tê kirin ku ew kes bi fisq û bid'etê hatibe nas kirin. Mîna wî mirovê ku bi vexwarina şerabê, çopandina malê însanan, standina bêşê bi zorê û hwd. hatiye nas kirin. Wî çaxî dirust e ku ew mirov bi çi hatibe naskirin behsa wê rewşa wî bê kirin. Lê heram e ku behsa 'eybeke wî ya din were kirin.

Şeşem: Diyarî ye. Wextê mirovek bi leqeb/navlêkekî bê nas kirin; wekî şevkor, kulek, kerr, kor û şaş hwd. caiz e bi wê leqebê bê nasandin. Lê bi awayê kêmasî bêne nasandin heram e. Heger bi xeynê evan wesfan bêne nasandin çêtir e.

'Aliman zikra van şeş sedeman kirine, zehfê van jî îtîfaq li ser heye û delîlê wan jî hedîsê sehîh û meşhûr in. Ev hedîsê jêrê jî ji wan hedîsa ne.

١٥٣٢- عَنْ عَائِشَةَ ﵂، أَنَّ رَجُلاً اِسْتَأْذَنَ عَلَى النَّبِيِّ ﷺ (فَقَالَ: ائْذَنُوا لَهُ، بِئْسَ أَخُو الْعَشِيرَةِ؟). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1532- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovekî ji bo ku were hizûra Pêxember (s.) destûr xwest. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Hûn destûra wî bidin, ew di êla xwe de çi mirovekî xerab e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٣٣- وَعَنْهَا قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا أَظُنُّ فُلَاناً وفُلَاناً يَعْرِفَانِ مِنْ دِينِنَا شَيْئاً). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

قَالَ الليثُ بْنِ سَعْد أَحَدُ رُوَاةِ الْحَدِيثِ: هَذَانِ الرَّجُلَانِ كَانَا مِنَ الْمُنَافِقِينَ.

1533- Dîsa ji wê (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ez zen nakim

ku filan û filan kes ji dînê me tu tiştekî bizanibin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

Leysê kurê Se'd, ku yek ji rawî yê hedîsê ye, got: Ew her du mirov munafiq bûn.

١٥٣٤- وَعَنْ فَاطِمَةَ بِنْتِ قَيْسٍ ﵂ قَالَتْ: أَتَيْتَ النَّبِيَّ ﷺ فَقُلْتُ: إِنَّ أَبَا الْجَهْمِ وَمُعَاوِيَةَ خَطَبَانِي؟ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَمَّا مُعَاوِيَةُ، فَصُعْلُوكٌ لَا مَالَ لَهُ، وَأَمَّا أَبُو الْجَهْمِ، فَلَا يَضَعُ الْعَصَا عَنْ عَاتِقِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1534- Ji Fatimeya keça Qeys (r.), got: Ez hatim cem Pêxemberê Xwedê (s.) min got: Ebû Cehm jî û Mu'awiye jî her du jî hatin xwazginiya min? Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Heçîka Mu'awiye, ew feqîr e û bê mal e. Lê Ebû Cehm jî gopal ji stûyê xwe danayne (yanî, li jinikan dixe)." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٣٥- وَعَنْ زَيْدِ بْنِ أَرْقَمَ ﵁ قَالَ: خَرَجْنَا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي سَفَرٍ، أَصَابَ النَّاسَ فِيهِ شِدَّةٌ، فَقَالَ عَبْدُ الله بْنُ أُبَي لِأَصْحَابِهِ: لَا تُنْفِقُوا عَلَى مَنْ عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ حَتَّى يَنْفَضوا وَقَالَ: لَئِنْ رَجَعْنَا إِلَى الْمَدِينَةِ لَيُخْرِجَنَّ الأَعَزُّ مِنْهَا الأَذَلَّ، فَأَتَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَأَخْبَرْتُهُ بِذَلِكَ، فَأَرْسَلَ إِلَى عَبْدِ اللَّهِ بْنِ أُبَيّ، فَاجْتَهَد يَمِينَهُ: مَا فَعَلَ، فقَالُوا: كَذَبَ زَيْدٌ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَوَقَعَ فِي نَفْسِي مِمَّا قَالُوهُ شِدَّةٌ، حَتَّى أَنْزَلَ الله تَعَالَى تَصْدِيقِي: (إِذَا جَاءَكَ الْمُنَافِقُونَ) ثُمَّ دَعَاهُمْ النَّبِيُّ ﷺ لِيَسْتَغْفِرَ لَهُمْ فَلَوَّوْا رُؤُوسَهُمْ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1535- Ji Zeydê kurê Erqem (r.), got: Em digel Pêxemberê Xwedê (s.) derketine seferekê û di wê seferê de ji ber birçîbûnê xelk ketine tengasiyeke pir zor. Li ser vê yekê (serokê munafiqan) 'Ebdullahê kurê Ubey ji munafiqan re got: Hûn nefeqê nedine wanê li bal Pêxemberê Xwedê, (s.) da ku ji dora wî (s.) belavbin û got: Heger em vegeriyane Medînê, dê mirovê bi rûmet, mirovê bêrûmet ji wê derê derxe. Zeyd (r.) dibêje: Vêca ez çûme bal Pêxemberê Xwedê (s.) û min ew bi vê gotinê agahdar kir. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) xeber ji 'Ebdullahê kurê Ubey re şand û gazî wî kir. 'Ebdullah jî bi hêz û tundî sond xwar ku tiştekî wisa negotiye. Vêca munafiqan gotin: Zeyd ji Pêxemberê Xwedê (s.) re derew kiriye. Ji ber vê gotina wan ez tengezar bûm heta ku Xwedê te'ala derbarê rastgotina min

de 'sûretê Munafiqûn' nazil kir. Piştî nuzûla vî sûretî, Pêxemberê Xwedê (s.) gazî wan kir da ku îstixfar û daxwaza bexişandina gunehên wan bike, lê wan rû badan û nehatin. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٣٦ - وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: قَالَتْ هِنْدُ إِمْرَأَةُ أَبِي سُفْيَانَ لِلنَّبِيِّ ﷺ: إِنَّ أَبَا سُفْيَانَ رَجُلٌ شَحِيحٌ وَلَيْسَ يُعْطِينِي مَا يَكْفِينِي وَوَلَدِي إِلَّا مَا أَخَذْتُ مِنْهُ، وَهُوَ لَا يَعْلَمُ؟ قَالَ: (خُذِي مَا يَكْفِيكِ وَوَلَدَكِ بِالْمَعْرُوفِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1536- Ji 'Aîşe (r.), got: Hînda xanima Ebû Sufyan ji Pêxemberê Xwedê (s.) re got: Bêguman Ebû Sufyan mirovekî tima û çikûs e, têra min û zarokê min nefeqeyê nade min. Vêca eger bi dizîka ez hinekî malê wî hildim gelo ji min re guneh e? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu bi anegorî urfê têra xwe û zarokê xwe hilde." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ تَحْرِيمِ النَّمِيمَةِ

## HERAMBÛNA FESADIYÊ
## (JI BO 'EWANTIYÊ DI NEQEBA ÎNSANAN DE PEYVGERANDIN)

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿هَمَّازٍ مَشَّاءٍ بِنَمِيمٍ﴾

"Yê tenavêj, 'eybderêx û ewê karê wî axaftinguhêz e (ji bo hilêxistina fitne û nexweşiyan)."[1]

﴿مَا يَلْفِظُ مِنْ قَوْلٍ إِلَّا لَدَيْهِ رَقِيبٌ عَتِيدٌ﴾

"Însan tu axaftinan nake (çi baş çi xerab), ku milyaketekî karkerî û zêrevanî digel wî nebe (û wê axaftinê nenivîse.)"[2]

١٥٣٧ - وَعَنْ حُذَيْفَةَ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا يَدْخُلُ الْجَنَّةَ نَمَّامٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1537- Ji Huzeyfe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mirovê fesad naçine cennetê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 Qelem, 68/11.
2 Qaf, 50/18.

  

١٥٣٨- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ مَرَّ بقَبْرَيْنِ، فَقَالَ: (إِنَّهُمَا يُعَذَّبَانِ، وَمَا يُعَذَّبَانِ فِي كَبِيرٍ بَلَى إِنَّهُ كَبِيرٌ: أَمَّا أَحَدُهُمَا، فَكَانَ يَمْشِي بِالنَّمِيمَةِ، وَأَمَّا الآخَرُ فَكَانَ لَا يَسْتَتِرُ مِنْ بَوْلِه). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1538- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) di ber du goran re derbas bû û got: "Ev her du jî ezab dibînin û 'ezabdîtina wan jî li cem wan ne ji bo gunehekî mezin e, lê gunehekî mezin e: Yekî ji wan fesadî dikir û yê din jî xwe ji mîza xwe nedistirand." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٣٩- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (أَلَا أُنَبِّئُكُمْ مَا الْعَضْهُ؟ هِيَ النَّمِيمَةُ، الْقَالَةُ بَيْنَ النَّاسِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1539- Ji kurê Mes'ûd (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Ez ji we re bêjim ka peyvia "'Edeh"ê çi ye? ew, di neqeba însanan de peyvgerandin e." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهي عَنْ نَقْل الْحَدِيث وَكَلَام النَّاس إِلَى وُلَاة الأُمُور

## QEDEXEKIRINA ŞIKAYETKIRIN Û GILÎKIRINAN ÎNSANAN LI BAL AMIRAN WEXTÊ KU HEWCEYÎ TUNE BE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَلَا تَعَاوَنُوا عَلَى الإِثْمِ وَالْعُدْوَانِ﴾

"Li ser guneh û destdirêjiyê arîkariya hevdu nekin."[1]

١٥٤٠- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا يُبَلِّغْنِي أَحَدٌ مِنْ أَصْحَابِي عَنْ أَحَدٍ شَيْئاً، فَإِنِّي أُحِبُّ أَنْ أَخْرُجَ إِلَيْكُمْ وَأَنَا سَلِيمُ الصَّدْرِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي.

1540- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bila tu sehabiyê min ji tu kesî tu tiştekî negihîne min. Lewra ez hez dikim ku bi dilekî pak û saxlem derkevime bal we." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine.*

1 Ma'îde, 5/2.

## بَابُ ذَمِّ ذِي الْوَجْهَيْنِ
## ZEMMA DURÛTIYÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿يَسْتَخْفُونَ مِنَ النَّاسِ وَلَا يَسْتَخْفُونَ مِنَ الله وَهُوَ مَعَهُمْ إِذْ يُبَيِّتُونَ مَا لَا يَرْضَى مِنَ الْقَوْلِ وَكَانَ الله بِمَا يَعْمَلُونَ مُحِيطاً﴾

"(ew, dûrutî û xiyaneta xwe) ji mirovan (ji tirs û şerman) vedişêrin û ji Xwedê venaşêrin. Her çendî Xweda digel wan bû wextê wan bi şev gotinên ku Xwedê pê ne xweş û ne razî ye ji hevdu re digotin. Bi rastî Xweda, bi wî tiştê ku ew dikin, baş agahdar e."[1]

١٥٤١- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (تَجِدُونَ النَّاسَ مَعَادِنَ، خِيَارُهُمْ فِي الْجَاهِلِيَّةِ خِيَارُهُمْ فِي الإِسْلَامِ إِذَا فَقِهُوا، وَتَجِدُونَ خِيَارَ النَّاسِ فِي هَذَا الشَّأْنِ أَشَدَّهُمْ لَهُ كَرَاهِيَةً، وَتَجِدُونَ شَرَّ النَّاسِ ذَا الْوَجْهَيْنِ، الَّذِي يَأْتِي هؤُلَاءِ بِوَجْهٍ، وَهَؤُلَاءِ بِوَجْهٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1541- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn însanan dibînin ku wekî madenê zêr û zîv in: Yê ku di dewra cahiliyetê de qenc bin di Îslamiyetê de jî, wextê xwe hînî ehkamê dîn bikin û pê 'emel bikin, dê qenc û pak bin. Hûnê bi di vî karî de (xîlafetê de) qenctirînê însanan ewên ku jê hez nakin bibînin. Hûnê bi bînin ku xerabtirê însanan jî kesê durû ne: Li bal van bi awayekî û li bal vanê hanê jî bi awayekî din diaxivin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٤٢- وَعَنْ مُحَمَّدِ بْنِ زَيْدٍ، أَنَّ نَاساً قَالُوا لِجَدِّهِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ ﷺ: إِنَّا نَدْخُلُ عَلَى سَلَاطِينِنَا فَنَقُولُ لَهُمْ بِخِلَافِ مَا نَتَكَلَّمُ إِذَا خَرَجْنَا مِنْ عِنْدِهِمْ. قَالَ: كُنَّا نَعُدُّ هَذَا نِفَاقا عَلَى عَهْدِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1542- Ji Muhemmedê kurê Zeyd (r.) hatiye rîwayetkirin ku hinek însanan

1 Nîsa, 4/108.

ji kalikê wî 'Ebdullahê Îbnu 'Umer (r.) re gotin: Em diçine hizûra sultan û serokê xwe, vêca em ji wan re dij û xilafa gotinên xwe yên ku wextê em ji cem wan derên dibêjin. Ewî (r.) got: Me ev di dewra Pêxemberê Xwedê (s.) de munafiqî dizanî. *Buxarî riwayet kiriye.*

## بَابُ تَحْرِيمِ الْكَذِب

## HERAMBÛNA DEREWAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَلَا تَقْفُ مَا لَيْسَ لَكَ بِهِ عِلْمٌ﴾

"Tiştê tu çi jê nezanî li dûv neçe."[1]

﴿مَا يَلْفِظُ مِنْ قَوْلٍ إِلَّا لَدَيْهِ رَقِيبٌ عَتِيدٌ﴾

"Însan tu axaftinan nake (çi baş çi xerab), ku milyaketekî karker û zêrevan digel wî nebe (û ewê axaftinê nenivîse.)"[2]

١٥٤٣- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ الصِّدقَ يَهْدِي إِلَى الْبِرِّ، وَإِنَّ الْبِرَّ يَهْدِي إِلَى الْجَنَّةِ، وَإِنَّ الرَّجُلَ لَيَصْدُقُ حَتَّى يُكْتَبَ عِنْدَ اللَّهِ صِدِّيقاً، وَإِنَّ الْكَذِبَ يَهْدِي إِلَى الْفُجُورِ، وَإِنَّ الْفُجُورَ يَهْدِي إِلَى النَّارِ، وَأَنَّ الرَّجُلَ لَيَكْذِبُ حَتَّى يُكْتَبَ عِنْدَ الله كَذَّاباً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1543- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Rastî berê însanî dide bi bal başiyê ve û başî jî berê însan dide bal cennetê ve û mirov rast dibêje/rastiyê ji xwe re dike exlaq heta li cem Xwedê te'ala ji siddîqan/rastgoyan tê nivîsandin. Bêguman derew jî berê însan dide bal nebaşiyê ve û nebaşî jî berê însan dide bi bal êgir ve û mirov derewan dike heta ku li cem Xwedê te'ala ji derewkeran tê nivîsandin." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٥٤٤- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (أَرْبَعٌ مَنْ كُنَّ فِيهِ، كَانَ مُنَافِقاً خَالِصاً، وَمَنْ كَانَتْ فِيهِ خَصْلَةٌ مِنْهُنَّ، كَانَتْ فِيهِ خَصْلَةٌ مِنْ نِفَاقٍ حَتَّى يَدَعَهَا:

1 Îsra, 17/36.
2 Qaf, 30/18.

إِذَا أُؤتمن خَانَ، وَإِذَا حَدَّثَ كَذَبَ، وَإِذَا عَاهَدَ غَدَرَ، وَإِذَا خَاصَمَ فَجَرَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1544- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Kesê ku tê de çar xûy û xeslet hebin ew munafiqê xalis e û kesê ku tê de yek ji van her çar xesletan hebe bêguman di wî de jî nîşaneke munafiqiyê heye heta wê biterikîne: Wextê emanetek stand xiyanetê dike, dema axaft derew dike, wextê soz da nayne cih û wextê minaqeşe kir ji rê derdikeve." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٤٥- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَنْ تَحَلَّمَ بِحُلْمٍ لَمْ يَرَهُ، كُلِّفَ أَنْ يَعْقِدَ بيْنَ شَعِيرَتَيْنِ وَلَنْ يَفْعَلَ، وَمَنِ اسْتَمَعَ إِلَى حَدِيثِ قَوْمٍ وَهُمْ لَهُ كَارِهُونَ، صُبَّ فِي أُذُنَيْهِ الآنُك يَوْمَ الْقِيَامَةِ، وَمَنْ صَوَّرَ صُورَةً، عُذِّبَ، وَكُلِّفَ أَنْ يَنْفُخَ فِيهَا الرُّوحَ وَلَيْسَ بِنَافِخٍ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1545- Ji kurê 'Ebbas (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Çi kesê xewneke nedîtî bêje min dîtiye wê bê teklîf û pêşniyarkirin bi girêdana du lib ceh bi hevdu re û lê ew jî tu car nikare wan bi hevdu re girêde. Kesê guh bide axaftina qewmekî ku ew jî hez nakin axaftina wan bê bihîstin, wê roja qiyametê risasê helandî di guhê wî de bê rijandin. Û kesê nîgar û peykerekî nîga bike wê bê 'ezabdayin û wê bê teklîf kirin bi ruh pifkirina wê û lê ew jî tu car nikare ruh bide wê." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٥٤٦- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (أَفْرَى الْفِرَي أَنْ يُرِيَ الرَّجُلُ عَيْنَيْهِ ما لَمْ تَرَيَا). رَوَاهُ البُخَارِي.

1546- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxember (s.) gotiye: "Mezintirînê derewa ew e ku mirov tiştê bi çavê xwe di xewnê de nedîtiye bibêje min dîtiye." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٥٤٧- وَعَنْ سَمُرَةَ بْنِ جُنْدُبٍ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ مِمَّا يُكْثِرُ أَنْ يَقُولَ لأَصْحَابِهِ: (هَلْ رَأَى أَحَدٌ مِنكُمْ مِنْ رُؤْيَا؟) فَيَقُصُّ عَلَيْهِ مَنْ شَاءَ الله أَنْ يَقُصَّ، وَأَنَّهُ قَالَ لَنَا ذَاتَ غَدَاةٍ: إِنَّهُ أَتَانِي اللَّيْلَةَ آتِيَانِ، وَانَّهُمَا قَالَا لِي: انْطَلِقْ، وَإِنِّي انْطَلَقْتُ مَعَهُمَا، وَإِنَّا أَتَيْنَا عَلَى رَجُلٍ مُضْطَجِعٍ، وإِذَا آخَرُ قَائِمٌ عَلَيْهِ بِصَخْرَةٍ، وَإِذَا هُوَ يَهْوِي بِالصَّخْرَةِ لِرَأْسِهِ، فَيَثْلَغُ

رَأْسَهُ، فَيَتَدَهْدَهُ الحَجَرُ هَاهُنَا، فَيَتْبَعُ الْحَجَرَ فَيَأْخُذُهُ، فَلا يَرْجِعُ إِلَيْهِ حَتَّى يَصِحَّ رَأْسُهُ كَمَا كَانَ، ثُمَّ يَعُودُ عَلَيْهِ، فَيَفْعَلُ بِهِ مِثْلَ مَا فَعَلَ الْمَرَّةَ الأُولَى قَالَ: قُلْتُ لَهُمَا: سُبْحَانَ الله، مَا هَذَانِ؟ قَالَا لِي: انْطَلِقْ، انْطَلِقْ، فانْطَلَقْنَا، فَأَتَيْنَا عَلَى رَجُلٍ مُسْتَلْقٍ لِقَفَاه وَإِذَا آخَرُ قائِمٌ عَلَيْهِ بِكَلُّوبٍ مِنْ حَدِيدٍ، وَإِذَا هُوَ يَأْتِي أَحَدَ شِقَّيْ وَجْهِهِ فَيُشَرْشِرُ شِدْقَهُ إِلَى قَفَاهُ، وَمَنْخِرَهُ إِلَى قَفاهُ، وَعَيْنَهُ إِلَى قَفَاهُ، ثُمَّ يَتَحَوَّلُ إِلَى الْجَانِبِ الآخَرِ، فَيَفْعَلُ بِهِ مِثْلَ مَا فَعَلَ بِالْجَانِبِ الأَوَّلِ، فَمَا يَفْرُغُ مِنْ ذَلِكَ الْجَانِبِ حَتَّى يَصِحَّ ذلِكَ الْجَانِبُ كَمَا كَانَ، ثُمَّ يَعُودُ عَلَيْهِ، فَيَفْعَلُ مِثْلَ مَا فَعَلَ فِي الْمَرَّةِ الأَولَى قَالَ: قُلْتُ: سُبْحَانَ الله، مَا هَذَانِ؟ قَالَ: قَالَا لِي: انْطَلِقْ، انطَلِقْ، فَانْطَلَقْنَا، فَأَتَيْنَا عَلَى مِثْلِ التَّنُّورِ فَأَحْسِبُ أَنَّهُ قَالَ: فَإِذَا فِيهِ لَغَطٌ، وَأَصْوَاتٌ، فَاطَّلَعْنَا فِيهِ فإِذَا فِيهِ رِجَالٌ وَنِسَاءٌ عُرَاةٌ، وَإِذَا هُمْ يَأْتِيهِمْ لَهَبٌ مِنْ أسفَلَ مِنْهُمْ، فإِذَا أَتَاهُمْ ذَلِكَ اللهَبُ ضَوْضَوْا. قُلْتُ: مَا هَؤُلَاءِ؟ قَالَا لِي: انْطَلِقْ، انْطَلِقْ، فَانْطَلَقْنَا فَأَتَيْنَا عَلَى نَهَرٍ حَسِبْتُ أَنَّهُ كَانَ يَقُولُ: أَحْمَر مِثْلُ الدَّمِ، وَإِذَا فِي النَّهَرِ رَجُلٌ سَابِحٌ يَسْبَحُ، وَإِذَا عَلَى شَطِّ النَّهَرِ رَجُلٌ قَد جَمَعَ عِنْدَهُ حِجَارَةً كَثِيرَةً، وَإِذَا ذَلِكَ السَّابِحُ يَسْبَحُ مَا يَسْبَحُ، ثُمَّ يَأْتِي ذَلِكَ الَّذِي قَدْ جَمَعَ عِنْدَهُ الْحِجَارَةَ، فَيَفْغَرُ لَهُ فَاهُ، فَيُلْقِمُهُ حَجَراً، فَيَنْطَلِقُ فَيَسْبَحُ، ثُمَّ يَرْجِعُ إِلَيْهِ، كُلَّمَا رَجَعَ إِلَيْهِ، فَغَرَ لَهُ فَاهُ، فَأَلْقَمَهُ حَجَراً. قُلْتُ لَهُمَا: مَا هَذَانِ؟ قَالَا لِي؟ انْطَلِقْ، انطَلِقْ، فَانْطَلَقْنَا، فَأَتَيْنَا عَلَى رَجُلٍ كَرِيهِ الْمَرْآةِ، أَوْ كَأَكرَهِ مَا أَنْتَ رَاءٍ رَجُلاً مَرْأَىً، فَإِذَا هُوَ عِنْدَه نَارٌ يحشُّهَا، وَيَسْعَى حَوْلَهَا. قُلْتُ لَهُمَا: مَا هَذَا؟ قَالَا لِي: انْطَلِقْ، انْطَلِقْ، فَانْطَلَقْنَا، فَأَتَيْنَا عَلَى رَوْضَةٍ مُعْتَمَّةٍ فِيهَا مِنْ كُلِّ نَوْرِ الرَّبِيعِ، وَإِذَا بَيْنَ ظَهْرَي الرَّوْضَةِ رَجُلٌ طَوِيلٌ لَا أَكَادُ أَرَى رَأْسَهُ طُوْلاً فِي السَّماءِ، وَإِذَا حَوْلَ الرَّجُلِ مِنْ أَكْثَرِ وِلْدَانٍ رَأَيْتُهُمْ قَطُّ، قُلْتُ: مَا هَذَا؟ وَمَا هَؤُلَاءِ؟ قَالَا لِي: انْطَلِقْ، انْطَلِقْ، فَانْطَلَقْنَا، فَأَتَيْنَا إِلَى دَوْحَةٍ عَظِيمَةٍ لَمْ أَرَ دَوْحَةً قَطُّ أَعْظَمَ مِنْهَا، وَلَا أَحْسَنَ قَالَا لِي: ارْقَ فِيهَا،

فَارتَقَينَا فِيهَا إِلَى مَدِينَةٍ مَبْنِيَّةٍ بِلَبِنِ ذَهَبٍ وَلَبَنِ فِضَّةٍ، فَأَتَينَا بَابَ الْمَدِينَة فَاسْتَفْتَحْنا، فَفُتحَ لَنَا، فَدَخَلنَاهَا، فتَلَقَانَا رِجَالٌ شَطْرٌ مِنْ خَلْقِهِمْ كأحْسَنِ مَا أَنْتَ رَاءٍ وَشَطْرٌ مِنْهُمْ كَأَقْبَحِ مَا أَنْتَ رَاءٍ قَالَا لَهُمْ: اذْهَبُوا فقعُوا فِي ذَلكَ النَّهْرِ، وَإِذَا هُوَ نَهرٌ مُعْتَرِضٌ يَجْرِي كَأَنَّ مَاءَهُ الْمَحضُ فِي الْبَيَاضِ، فَذَهَبُوا فَوَقعُوا فِيهِ. ثُمَّ رجعُوا إِلَيْنَا قَدْ ذَهَبَ ذَلِكَ السُّوءُ عَنْهُمْ، فَصَارُوا فِي أَحْسَنِ صُورَةٍ. قَالَ: قَالَا لِي: هَذِهِ جَنَّةُ عَدْنٍ، وَهَذَاكَ مَنْزِلُكَ، فَسَمَا بَصَرِي صُعُداً، فَإِذَا قَصْرٌ مِثْلُ الرَّبَابَةِ البَيْضَاءِ. قَالَا لِي: فَذَاكَ مَنْزِلكَ قُلْتُ لَهُمَا: بَارَكَ الله فِيكُمَا، فَذرَانِي فَأَدْخُلَهُ. قَالَا: أَمَّا الآن فَلَا، وَأَنْتَ دَاخِلُهُ. قُلْتُ لَهُمَا: فَإِنِّي رَأَيتُ مُنْذُ اللَّيْلَةِ عَجَباً؟ فَمَا هَذَا الَّذِي رَأَيتُ؟ قَالَا لِي؟ أَمَا إِنَّا سَنُخْبِرُكَ: أَمَّا الرَّجُلُ الأَوَّلُ الَّذِي أَتَيتَ عَلَيْهِ يُثْلَغُ رَأْسُهُ بِالْحَجَرِ، فَإِنَّهُ الرَّجُلُ يَأْخُذُ الْقُرْآنَ فَيَرْفُضُهُ، وَيَنَامُ عَنِ الصَّلَاةِ الْمَكْتُوبةِ، وَأَمَّا الرَّجُلُ الَّذِي أَتَيتَ عَلَيْهِ يُشَرْشَرُ شِدْقُهُ إِلَى قَفَاهُ، وَمَنْخِرُه إِلَى قَفَاهُ، وَعَيْنُه إِلَى قَفَاهُ، فَإِنَّهُ الرَّجُلُ يَغْدُو مِنْ بَيْتِهِ فَيَكذِبُ الْكَذْبَةَ تَبْلُغُ الآفَاقَ، وَأَمَّا الرِّجَالُ وَالنِّسَاءُ الْعُرَاةُ الَّذِينَ هُمْ فِي مِثْلِ بِنَاءِ التَّنُّوْرِ، فَإِنَّهُمْ الزُّنَاةُ وَالزَّوَانِي، وَأَمَّا الرَّجُلُ الَّذِي أَتَيْتَ عَلَيْهِ يَسْبَحُ فِي النَّهَرِ، وَيُلْقَمُ الْحِجارَةَ، فَإِنَّهُ آكِلُ الرِّبَا، وَأَمَّا الرَّجُلُ الْكَرِيْهُ الْمَرْآةِ الَّذِي عِنْدَ النَّارِ يَحشُّهَا وَيَسْعَى حَوْلَها، فَإِنَّهُ مَالِكٌ خَازِنُ جَهَنَّمَ، وَأَمَّا الرَّجُلُ الطَّوِيلُ الَّذِي فِي الرَّوْضَةِ، فَإِنَّهُ إِبْرَاهِيْمُ ﷺ وَأَمَّا الْوِلْدَانُ الَّذِينَ حَوْلَهُ، فَكُلُّ مَوْلُوْدٍ مَاتَ عَلَى الفِطْرَةِ.

وَفِي رِوَايَةِ البَرْقَانِيِّ: وُلِدَ عَلَى الفِطْرَةِ فَقَالَ بَعْض الْمُسْلِمينَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، وَأَوْلَادُ الْمُشْرِكِينَ؟ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: وَأَوْلَادُ الْمُشْرِكِيْنَ، وَأمَّا الْقَوْمُ الَّذِيْنَ كَانُوا شَطْرٌ مِنْهُمْ حَسَنٌ، وشَطْرٌ مِنْهُمْ قَبِيْحٌ، فَإِنَّهُمْ قَوْمٌ خَلَطُوا عَمَلاً صَالِحاً وآخَرَ سيِّئاً، تَجَاوَزَ الله عَنْهُمْ. رَوَاهُ البُخَارِي.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: رَأَيتُ اللَّيْلَةَ رَجُلَيْنِ أَتَيَانِي فَأَخْرَجَانِي إِلَى أَرْضٍ مُقَدَّسَةٍ ثُمَّ ذَكَرَهُ

  

وَقَالَ: فَانْطَلَقنَا إِلَى نَقبٍ مِثْلِ التَّنُّورِ، أَعْلاَهُ ضَيِّقٌ وَأَسْفَلُهُ وَاسِعٌ، يَتَوَقَّدُ تَحْتَهُ نَاراً، فَإِذَا ارْتَفَعَتْ ارْتَفَعُوا حَتَّى كَادُوا أَنْ يَخْرُجُوا، وَإِذَا خَمدَتْ، رَجَعوا فِيهَا، وَفِيهَا رِجَالٌ وَنِسَاءٌ عُرَاةٌ. وَفِيهَا حَتَّى أَتَينَا عَلَى نَهْرٍ مِنْ دَمٍ وَلَمْ يشكَّ فِيهِ رَجُلٌ قَائِمٌ، عَلَى وَسَطِ النَّهَرِ -وعَلَى شَطِّ النَّهْرِ- رَجُلٌ، وَبَيْنَ يَدَيهِ حِجَارَةٌ، فَأَقْبَلَ الرَّجُلُ الَّذي فِي النَّهْرِ، فَإِذَا أَرَادَ أَنْ يَخْرُجَ، رَمَى الرَّجُلُ بِحَجَرٍ فِي فِيهِ، فَرَدَّهُ حَيْثُ كَانَ، فَجَعَلَ كُلَّمَا جَاءَ لَيَخْرُجَ جَعَلَ يَرْمِي فِي فِيه بحَجَرٍ، فَيَرْجعُ كَمَا كَانَ، وَفِيهَا: فَصَعِدَا بِي الشَّجَرَةَ، فَأَدْخَلاني دَاراً لَمْ أَرَ قَطُّ أَحْسَنَ مِنْهَا، فِيهَا رِجَالٌ شُيُوخٌ وَشَبَابٌ. وَفِيهَا: الَّذِي رَأَيْتَهُ يُشَقُّ شِدْقُهُ فَكَذَّابٌ، يُحَدِّثُ بِالْكَذْبَةِ فَتُحْمَلُ عَنْهُ حَتَّى تَبْلُغَ الآفَاقَ، فَيُصْنَعُ بِهِ مَا رَأَيْتَ إِلَى يَوْمِ الْقِيامَةِ وَفِيهَا: الَّذِي رَأَيْتَهُ يُشْدَخُ رَأْسُهُ فَرَجُلٌ عَلَّمَهُ الله الْقُرْآنَ، فَنَامَ عَنْهُ بِاللَّيْلِ، وَلَمْ يَعْمَلْ فِيهِ بِالنَّهَارِ، فَيُفْعَلُ بِهِ إِلَى يَوْمِ الْقِيامَةِ، وَالدَّارُ الأُولَى الَّتِي دَخَلْتَ دَارُ عَامَّةِ الْمُؤْمِنِينَ، وَأَمَّا هَذِهِ الدَّارُ فَدَارُ الشُّهَدَاءِ، وَأَنَا جِبْرِيلُ، وَهَذَا مِيكَائِيلُ، فَارْفَعْ رَأْسَكَ، فَرَفَعتُ رَأْسِي، فَإِذَا فَوْقِي مِثْلُ السَّحَابِ، قَالاَ: ذَاكَ مَنْزِلُكَ، قُلْتُ: دَعَانِي أَدْخُلْ مَنْزِلِي، قَالاَ: إِنَّهُ بَقِيَ لَكَ عُمُرٌ لَمْ تَسْتَكْمِلْهُ، فَلَو اسْتَكْمَلْتَهُ، أَتَيْتَ مَنْزِلَكَ. رَوَاهُ البُخَارِي.

1547- Ji Semureyê kurê Cundub (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) pir caran ji sehabiyên xwe dipirsî: "Ji we tu kesî îşev xewn dîtiye? Û xewna wî kesê ku digot: 'min xewn dîtiye' li gorê viyîn/hezkirina Xwedê te'ala te'bîr û şîrove dikir. Pêxemberê Xwedê (s.) sibehekê ji me re got: "Îşev di xewnê de du mirov hatine cem min û ji min re gotin: Haydê were, ez jî digel wan her duyan çûm, em hatine bal mirovekî ku xwe li ser piştê dirêj kiribû, li ber serê wî jî mirovekî din rawestiya bû ku di destê wî de jî kuçek hebû û ew kuç li serê wî mirovê dirêjkirî dida. Vêca serê wî dişkand û ew kuç digindirî, ew mirov li pey wî kuçî diçû heta dizîvirî lê dinêrî serê wî wekî berê qenc bûye. Dîsa pê wî kuçî serê wî mirovê dirêjkirî dida wekî cara yekem. Vêca min ji wan her duyan re got: Subhanellah! Ev herduk çi kes in? Ewan jî ji min re gotin: Tu were were. Em çûn. Vêca em hatine bal mirovekî ku li ser stûyê xwe vezeliyabû û li ber serê wî jî mirovek rawestiya

bû ku di destê wî de çengelekî hesin hebû. Ew diçû, bi wê çengelê kêlekek rûyê wî; ji gep, ji bêhvilê/poz û ji çavê wî heta stûyê wî diqelişand û paşê dizîvirî bal kêleka din ve, ew jî mîna kêleka pêşî diqelişand. Heta ji qelişandina kêlekekê vala dibû lê dinêrî kêleka din qenc bûye wekî berê. Dîsa bi wê çengelê ew mirovê vezeliyayî, wekî cara yekem; gep, bêhvil, poz û çavê wî heta stûyê wî diqelişand." Pêxemberê Xwedê (s.) dibêje: Min got: "Subhanellah! Ev herduk çi kes in?" ew (s.) dibêje: "Ewan her duyan jî ji min re gotin: Tu were were. Em çûn. Vêca em hatin bal avahiyeke wekî tenûrê." Rawî dibêje: Ez zen dikim Pêxemberê Xwedê (s.) wiha got: "Di wê derê de qêrîn û qîjîn û deng dihatin. Wextê em çûne ser wê tenûrê û me berê xwe dayê me dît ku di wir de hinek jin û mêrên tazî hene û ji binya wan pêtê êgir bi aliyê wan ve tê. Vêca wextê ew pêtê êgir ber bi wan dihat dibû feryad û fîxana wan. Min got: Ev kî ne? Ewan her duyan jî ji min re gotin: Tu were were. Em çûn. Vêca em hatine ser çemekî." Rawî dibêje: Ez zen dikim Pêxemberê Xwedê (s.) wiha got: "Ku ew çem wekî xûna sor bû û mirovekî ajneber di wî çemî de dikir. Li ser devê çem jî mirovekî ku li cem xwe gelek kevir kom kiribû hebû, ew mirovê ajneber heta ku bikarbûya soberî dikir û paşê dihate bal wî mirovê ku li cem xwe kevir kom kiriye. Vêca ajneber devê xwe vedikir ewî mirovê kevir komkiribû kevirek dihavête devê wî û ajnebêr diçû û dîsa soberî dikir. Paşê dîsa dihat. Vêca ajneber çiqasa bizviriya devê xwe vedikir û ewê din jî kevir dixiste devê wî. Min ji wan her duyan re got: Ev her du çi kes in? Ewan her duyan jî ji min re gotin: Tu were were. Em çûn. Vêca em hatine bal mirovekî xuyanga wî kirêt bû, yan jî ji aliyê xuyangê ve wekî kirêttirê mêrê te dîtibû, vêca wî mirovî li kêleka xwe agir hildikir û li dora wî agirî dizivirî. Min ji wan her duyan re got: Ev çi ye? Ewan her duyan jî ji min re gotin: Tu were were. Em çûn. Vêca em hatine cem bax û bostanekî ku temamê kulîlkê biharê tê de hebûn û di navenda wî baxî de jî mirovekî bejin bilind hebû ku hindik mabû ez serê wî yê dirêjî asîmana bûbû nebînim. Û li dora wî jî kom kom zarok hebûn ku min di jîn û heyata xwe de ewqas zarok nedîtibûn. Min got: Ev kî ye? Û evana kî ne? Ewan her duyan jî ji min re gotin: Tu were were. Em çûn. Vêca em hatine bal daristanekî ku min tu car daristeneke ji wê daristanê mezintir û rindtir nedîtibû. Ewan her duyan ji min re gotin: Tu hilkişe vê daristanê. Vêca em di wê daristanê de hilkişiyane bajarekî ku ji kerpîçê zêr û zîv hatibû ava kirin. Em hatine ber derê wî bajarî û me daxwaza vekirina derî kir. Vêca derî ji me re hate vekirin, em ketine wî bajarî û hinek mirovê ku nîvê bedena wan wekî rindtirê kesê te dîtî û

  

nîvê bedena wan jî wekî kirêttirê kesê te dîtibû em pêşwazî kirin. Ewan her duyan ji wan mirovan re gotin: Hûn herin bikevne vî çemî. Min berê xwe dayê, min lê nihêrî ew çem diherike û ava wî mîna şîrê cincilî bû. Ew mirov jî çûn, ketine wî çemî û paşê jî vegeriyane bal me ku ew kirêtiya wan ji wan çûbû û ew ji hemû şekl û şêwan bedewtir bûbûn. Ewan her duyan ji min re gotin: Eva hanê “Cennetu ‘Edn e” û eva hanê jî qonaxa te ye. Vêca min çavê xwe bilind kir û min li aliyê rojê nihêrî min qesreke wekî ewrê spî dît. Ewan her duyan ji min re gotin: Ev qesra hanê qonaxa te ye. Min jî ji wan her duyan re got: Xwedê te‘ala we mubarek bike. Hûn min bihêlin ku ez herime wêderê. Ewan gotin: Niha naxêr. Lê tê herî tê de. Min ji wan her duyan re got: Min îşev pir tiştên ecêb dîtin, ev tiştê min dît çi bûn? Vêca ewan her duyan ji min re gotin: Emê ji te re bêjin: Heçîka ew mirovê yekem tu çûyî bal ku serê wî bi kevir dihate şikandin, ewî mirovî Qur’an xwendiye û lê hişk kiriye û xewa xwe jî ji nimêja ferz çêtir dîtiye. Heçîka ew mirovê tu çûyî bal ku gep, poz û çavê wî heta serê wî dihate qelişandin, ew mirov yê ku sibehê ji mala xwe derdiket û wisa derew dikir ku derewê wî digihîşte asîmanan. Heçîka ew jin û mêrê tazî ku di avahiyeke mîna tenûrê de bûn, ew jî jin û mêrê zinaker bûn. Heçîka ew mirovê tu çûyî bal ku di çem de soberî dikir û kevir dadiqûrtand, ew mirov yê ku xwariyê faîz/mişepera ye. Heçîka ew mirovê xuyanga wî kirêt e ku li bal agirê vêxistî bû û li dora wî dizvirî, ew jî Malikê parêzgerê cehennemê ye. Heçîka ew mirovê bejnbilind yê ku di nav bax de bû, ew jî Îbrahîm (e.) bû û ew zarokê dora wî jî temamê zarokê li ser fitretê mirine bûn.” Di seneda Berqanî de: Zarokê li ser fitretê hatine dunyayê. “Li ser vê gotinê hinek misilmanan gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Lê zarokê muşrikan? Pêxemberê Xwedê (s.) got: Zarokên muşrikan jî (wê herine cennetê). Heçîka ew qewmê ku nîvê wan rind bûn û nîvê wan yê din jî kirêt bûn, ew; ew kes in ku di dunyayê de kar û kiryarê qenc û neqenc têkilî hev dikirin, lê Xwedê te‘ala ji wan borî ye û ew bexişandine.” *Buxarî riwayet kiriye.*

Di senedeke Buxarî de: Pêxemberê Xwedê (s.) dibêje: “Min îşev di xewna xwe de du mirov dîtin, ew hatine bal min û ez birime erdeke muqeddes.” Paşê Pêxemberê Xwedê (s.) hedîs zikir kir û got: “Em çûne neqebeke mîna tenûrê ku jora wê teng û jê ra wê jî fireh bû di. Bin wê de agir vêdiket; vêca wextê pêta agir bilind dibû ew jî bilind dibûn hindik dima ku ji wê neqebê derên û wextê pêta agir nêzîkî temirandinê dibû ew jî berjêrî wê neqebê dibûn. Û di wê neqebê de mêr û jinê tazî hebûn.”

Di vê senedê de: “Heta em hatine cem çemekî ji xûnê.” Rawî di seneda

pêşiyê de ketibû şikkê lê di vê senedê de şikber nebûye. "Di navenda wî çemî de miroveki li ser piya rawestiyayî hebû û li qeraxê çem jî mirovek hebû ku li pêşya wî kevir hebûn. Ew mirovê di çem de wextê dixwest ku ji çem derkeve, ew mirovê li qeraxa çem, kevirek diavête devê wî û dîsa ew dişande ciyê ku jê tê. Ew mirov çiqasî bihata, ew mirovê din kevirek diavête devê wî û ew dizvirî cihê xwe.

Di vê senedê de: "Ewan her duyan ez berjorî daristanekî kirim, di wê daristanê de jî ez xistime avahiyeke ku min tu car ji wê avahiyê rindtir tu avahî nedîtibû. Û di wir de mêrê kal û xort hebûn."

Di vê senedê de: "Ew mirovê ku te dît ku gepa wî dihate qelişandin, ew mirovekî derewîn û virek bû. Ewî derew dikir û derewê wî jê dihatine hilgirtin heta digihîştine asîmana. Vêca heta roja qiyametê ew kirin û ezaba ku te dît, wê bi wî bê kirin.

Di vê senedê de: "Ew mirovê ku te dît ku serê wî dihate şikandin, ew mirov e ku Xwedê te'ala Qur'an a Pîroz hînî wî kiribû; vêca ew mirov bi şev jê radiza û nedixwend, bi roj jî pê emel nedikir. Vêca ev kirin û ezab heta roja qiyametê wê bi wî mirovî bê kirin. Heçîka ew avahiya yekem ku tu ketê, ew avahiya temamê misilmana ye. Lê heçîka ev avahiya hanê, avahiya şehîda ye. Ez Cebraîl im û ev jî Mikaîl e. Tu serê xwe bilind ke. Vêca min serê xwe bilind kir û min lê nihêrî ku li ser serê min qesreke mîna ewran heye. Ewan her duyan gotin: Eva hanê qonaxa te ye. Min jî got: Ez bikevime qonaxa xwe. Ewan gotin: Hê umrê te maye ku te temam nekiriye. Wextê te umrê xwe temam kir, tê werî qonaxa xwe." *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ بَيَان مَا يَجُوز مِن الْكذب

اِعْلَمْ أَنَّ الْكذب وَإِنْ كَانَ أَصْلهُ مُحرَّمٌ، فَيَجُوزُ فِي بَعْضِ الأَحْوَالِ بِشرُوطٍ قَدْ أَوْضَحْتُهَا فِي كِتَابِ الأَذْكَارِ، وَمُخْتَصرُ ذَلِكَ أَنَّ الْكَلامَ وَسِيلَة إِلَى الْمَقَاصِدِ، فَكُلُّ مَقْصُودٍ مَحْمُود يُمْكِنُ تَحْصِيلهُ بِغَيْرَ الْكذبِ يحرمُ الْكذبُ فِيهِ، وَإِنْ لَمْ يمكنْ تَحْصِيلهُ إِلَّا بِالْكَذبِ جَازَ الكّذبُ، ثُمَّ إِنْ كَانَ تَحْصِيلُ ذَلِكَ الْمَقْصُودِ مُبَاحاً كَانَ الْكذبُ مُبَاحاً، وَإِنْ كَانَ وَاجِباً كَانَ الْكَذبُ وَاجِباً.

## DAXUYANIYA QISMÊ JI DEREWAN CAYÎZ

Tu bizan, bêguman çendan derew di esl û bingeha xwe de heram e jî, lê li gor hinek kar û meslehetan di hinek cihan de ji derewê re rê heye û derew cayîz e. Bi wan şertên ku min di kitêba "Ezkar"ê de zikir kiriye. Lewra axaftin navgîna mebest û meqseda ne. Vêca temamê mebesta qenc,

bi destxistina wê bê derew mimkun be wî çaxî derew heram dibe. Lê eger bi destxistina wê mebestê bê derew mimkûn nebe wî çaxî derew jî cayîz dibe. Paşê eger bi destxistina wê mebestê mubah be derew jî mubah e, eger wacib be derew jî wacib e.

١٥٤٨- عَنْ أُمِّ كُلْثُوم ﵂ أَنَّهَا سَمِعَتْ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (لَيْسَ الْكَذَّابُ الَّذِي يُصْلِحُ بَيْنَ النَّاسِ، فَيَنْمِي خَيْراً أَوْ يَقُولُ خَيْراً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

زَادَ مُسْلِم فِي رِوَايَةٍ: قَالَتْ أُمُّ كُلْثُوم: وَلَمْ أَسْمَعْهُ يُرَخِّصُ فِي شَيْءٍ مِمَّا يَقُولُ النَّاسُ إِلَّا فِي ثَلَاثٍ، تَعْنِي: الْحَرْبَ، وَالإِصْلَاحَ بَيْنَ النَّاسِ، وَحَدِيثَ الرَّجُلِ إِمْرَأَتَهُ، وحَدِيثَ الْمَرْأَةِ زَوْجَهَا.

1548- Ji Ummu Gulsûm (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewê ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye, wiha digot: “Mirovê derewîn û virek, ne ew kesê ku aşitiyê û sulhê di navbera însanan de dike û xeberên baş digihîne terefan yan jî xêrê dibêje ye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Muslim di seneda xwe de zêde kiriye: Ummu Gulsûmê gotiye: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) nebihîstiye ku ji bilî van sê cihan de, ji axaftinê xelkê ruxset dabe: Herb, aşitiya di navbera însanan û yek jî mêr ji jina xwe re û derewaxaftina jinê ji mêrê xwe re (ji bo sazûmaniya malbatê).

## بَابُ الْحَثِّ عَلَى التَّثَبُّتِ فِيمَا يَقُولُهُ وَيَحْكِيهِ

## TEŞWÎQA LI SER MUHKEMKIRINA TIŞTÊ KU ÎNSAN WÊ BÊJE Û WÊ VEGUHÊZE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَلَا تَقْفُ مَا لَيْسَ لَكَ بِهِ عِلْمٌ﴾

“Tiştê ku tu jê ne agahdar be, li ser nesekine!.”[1]

﴿مَا يَلْفِظُ مِنْ قَوْلٍ إِلَّا لَدَيْهِ رَقِيبٌ عَتِيدٌ﴾

“Însan tu axaftinan nake (çi baş çi xerab), ku milyaketekî karkerî û zêrevanî digel wî nebe (û wê axaftinê nenivîse.)”[2]

1 Îsra, 17/36.
2 Qaf, 50/18.

١٥٤٩ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (كَفَى بِالْمَرْءِ كَذِباً أَنْ يُحَدِّثَ بِكُلِّ مَا سَمِعَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1549- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Besî mirovî ye ji aliyê derew ve axaftina bi hemû tiştên ku bihîstiye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٥٠ - وَعَنْ سَمُرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ: رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ حَدَّثَ عَنِّي بِحَدِيثٍ يَرَى أَنَّهُ كَذِبٌ، فَهُوَ أَحَدُ الْكَاذِبِيْنَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1550- Ji Semureyê kurê Cundub (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê ku ji min axaftineke ku dizane derew e ragihîne, ew jî yek ji derewîn û vireka ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٥١ - وَعَنْ أَسْمَاءَ ﷺ: أَنَّ إمْرَأَة قَالَتْ: يَا رَسُولَ الله إنَّ لِي ضَرَّةً فَهَلْ عَلَيَّ جُنَاحٌ إنْ تَشَبَّعْتُ مِنْ زَوْجِي غَيْرَ الَّذِي يُعطِينِي؟ فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (الْمُتَشَبِّعُ بِمَا لَمْ يُعْطَ كَلَابِس ثَوْبَي زُورٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1551- Ji Esmaya keça Ebû Bekirê Siddîq (r.) hatiye rîwayetkirin ku jinekê got: Ya Pêxemberê Xwedê (s.) hewiyeke min heye, vêca eger tiştê mêrê min nedaye min ez xwe pêşberê wê wisa bidime diyar kirin her wekî daye min, tu guneh ji min re heye? Li ser vê gotinê Pêxember (s.) got: "Kesê ku bi tiştekî ku jê re nehatiye dayin xwe bide nîşandan, wekî wî kesê ku du kincên qelp û sexte vegirtine ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ بَيَان غلظ تَحْرِيم شَهَادَة الزُّورِ

## ŞÎROVEKIRINA MEZINAHIYA HERAMBÛNA ŞEHDA DEREW

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَاجْتَنِبُوا قَوْلَ الزُّورِ﴾

"Hûn xwe ji şehda zûriyê biparêzin û xwe jê dûr bixin."[1]

﴿وَلَا تَقْفُ مَا لَيْسَ لَكَ بِهِ عِلْمٌ﴾

"Tiştê tu çi jê nezanî li dûv neçe."[2]

1 Hecc, 22/30.
2 Îsra, 17/36.

﴿مَا يَلفِظُ مِنْ قَوْلٍ إِلَّا لَدَيْهِ رَقِيبٌ عَتِيد﴾

"Însan tu axaftinan nake (çi baş çi xerab), ku milyaketekî karkerî û zêrevan digel wî nebe (û wê axaftinê nenivîse.)"[1]

﴿إِنَّ رَبَّكَ لَبِالْمِرْصَادِ﴾

"Xwedayê te li ber wana rawestayî ye "[2]

﴿وَالَّذِينَ لَا يَشْهَدُونَ الزُّورَ﴾

"Ewê şehdebûna derew nakin."[3]

١٥٥٢- وَعَنْ أَبِي بَكْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَلَا أُنَبِّئُكُمْ بِأَكْبَرِ الْكَبَائِرِ؟) قُلْنَا: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: (الإِشْرَاكُ بِاللَّهِ، وَعُقُوقُ الْوَالِدَيْنِ) وَكَانَ مُتَّكِئاً فَجَلَسَ، فَقَالَ: (أَلَا وَقَوْلُ الزُّورِ) فَمَا زَالَ يُكَرِّرُهَا حَتَّى قُلْنَا: لَيْتَهُ سَكَتَ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1552- Ji Ebû Bekir (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ez we agahdar bikim bi mezintirê gunehê kebayîr?" Me got: Belê, ya Pêxemberê Xwedê! Ewî (s.) got: "Çêkirina şirîkan ji bo Xwedê, bêemriya dê û bavan." Pêxemberê Xwedê (s.) paldayibû, vêca rûnişt û got: "Hûn hişyar bin, yek jî şahidiya bi derewan e." Pêxemberê Xwedê (s.) ev gotina xwe wisa tekrar kir, heta me got: Xwezî Pêxemberê Xwedê (s.) bisekniya û dengê xwe bibiriya. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ تَحْرِيم لَعْن إِنْسَان بِعَيْنِه أَوْ دَابَة

## HERAMBÛNA LANETANÎNA ÎNSANEKÎ YAN JÎ DEWAREKA KIFŞ

١٥٥٣-عَنْ أَبِي زَيْدٍ ثَابِتِ بْنِ الضَّحَّاكِ الأَنْصَارِيِّ ﷺ وَهُوَ مِنْ أَهْلِ بَيْعَةِ الرِّضْوَانِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَن حَلَفَ عَلَى يَمِينٍ بِمِلَّةٍ غَيْرِ الإِسْلَام كَاذِباً مُتَعَمِّداً، فَهُوَ كَمَا قَالَ، وَمَنْ قَتَلَ نَفْسَهُ بِشَيْءٍ، عُذِّبَ بِهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، وَلَيْسَ عَلَى رَجُلٍ نَذْرٌ فِيمَا لَا يَمْلِكُهُ، وَلَعْنُ الْمُؤْمِنِ كَقَتْلِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

---

1 Qaf, 50/18.
2 Fecr, 89/14.
3 Furqan, 25/72.

1553- Ji Ebû Zeyd Sabitê kurê Dehhakê Ensarî (r.), ku ew ji ehlê Bey'etur-Ridwanê ye, got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê li ser dînekî ji xeynî dînê Îslamê bi zaneyî derew sond bixwe (Mesela bêje: Eger ez vî karî bikim ez Cihû yan jî Fileh bim), ew dibe wekî gotina xwe. Kesê xwe bi tiştekî bikuje, roja qiyametê wê bi wî tiştî bê 'ezabdan. Li ser tu kesî, di tişte ne mulkê wî be nezir lazim nîne. Lanetanîna li mu'min, wekî kuştina wî ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٥٤- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ: قَالَ: (لَا يَنْبَغِي لِصِدِّيقٍ أَنْ يَكُونَ لَعَّاناً). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1554- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bi kêrî rastbêj nayê ku lanetker be." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٥٥- وَعَنْ أَبِي الدَّرْدَاءِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا يَكُونُ اللَّعَّانُونَ شُفَعَاءَ، وَلَا شُهَدَاءَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1555- Ji Ebû Derda (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê lanetker, di roja qiyametê de ne dibine mehdervan û ne jî dibine şahid." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٥٦- وَعَنْ سَمُرَةَ بْنِ جُنْدُبٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَلَاعَنُوا بِلَعْنَةِ اللَّهِ، وَلَا بِغَضَبِهِ، وَلَا بِالنَّارِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِيُّ، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1556- Ji Semureyê kurê Cundub (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn bi laneta Xwedê, bi xezeba wî û bi êgir laneta hevdu nekin û nifira li hevdu nekin." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

١٥٥٧- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَيْسَ الْمُؤْمِنُ بِالطَّعَّانِ، وَلَا اللَّعَّانِ، وَلَا الْفَاحِشِ، وَلَا الْبَذِيءِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِيُّ، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1557- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mu'minê kamil; ne zemker, ne lanetker, ne xedar û ne jî bêşerm e." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

١٥٥٨ – وَعَنْ أَبِي الدَّرْدَاءِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ الْعَبْدَ إِذَا لَعَنَ شَيْئاً، صَعِدَتِ اللَّعْنَةُ إِلَى السَّمَاءِ، فَتُغْلَقُ أَبْوَابُ السَّمَاءِ دُونَهَا، ثُمَّ تَهْبِطُ إِلَى الأَرْضِ، فَتُغلَق، أَبْوَابُهَا دُونَهَا، ثُمَّ تَأْخُذُ يَمِيناً وَشِمَالاً، فَإِذَا لَمْ تَجِدْ مَسَاغاً رَجَعَتْ إِلَى الَّذِي لُعِنَ، فَإِنْ كَانَ أَهْلاً لِذَلِكَ، وَإِلَّا رَجَعَتْ إِلَى قَائِلِهَا). رَوَاهُ أَبُو دَاوود.

1558- Ji Ebû Derda (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Bêguman wextê ‘ebd lanetê li tiştekî tîne; ew lanet bilind dibe bi bal asîmanan vêca ji ber wê lanetê deriyê asîmanan têne girtin. Paşê berjêrî erdê dibe deriyê erdê jî ji ber wê têne girtin û paşê berê xwe dide aliyê rastê û aliyê çepê. Vêca wextê cihekî ketinê nedît eger ew ji lanetê re misteheq be dizvire bi bal wî kesê lanet lê hatiye anîn. Lê eger ji lanetê re misteheq nebe ew lanet vedigere bi bal gotoxê xwe ve.” *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

١٥٥٩ – وَعَنْ عِمْرَانَ بْنِ الحُصَيْنِ ﷺ قَالَ: بَيْنَمَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فِي بَعْضِ أَسْفَارِهِ، وَإِمْرَأَةٌ مِنَ الأَنْصَارِ عَلَى نَاقَةٍ، فَضَجِرَتْ، فَلَعَنَتْهَا، فَسَمِعَ ذَلِكَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: (خُذُوا مَا عَلَيْهَا وَدَعُوهَا، فَإِنَّهَا مَلْعُونَةٌ).

قَالَ عِمْرَانُ: فَكَأَنِّي أَرَاهَا الآنَ تَمْشِي فِي النَّاسِ مَا يَعرِضُ لَهَا أَحَدٌ. رَوَاهُ مُسْلِم.

1559- Ji ‘Îmranê kurê Husayn (r.), got: Dema ku Pêxemberê Xwedê (s.) di seferekê de bû, jineke Ensariyan jî li ser deveha xwe bû. Vêca ew jinik hêrs bû û lanet li wê devehê anî. Pêxemberê Xwedê (s.) jî ew bihîst û got: “Hûn tiştê li ser wê devehê hildin û wê devehê jî berdin bila here. Lewra ew êdî mel‘ûn e.” Îmran dibêje: Ez qey niha wê devehê dibînim ku di nav însanan de dimeşe lê tu kes tev wê nabe. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٦٠ – وَعَنْ أَبِي بَرْزَةَ نَضْلَةَ بْنِ عُبَيْدٍ الأَسْلَمِيِّ ﷺ قَالَ: بَيْنَمَا جَارِيَةٌ عَلَى نَاقَةٍ، عَلَيْهَا بَعضُ مَتَاعِ الْقَوْمِ، إِذْ بَصُرَتْ بِالنَّبِيِّ ﷺ وَتَضَايَقَ بِهِمُ الْجَبَلُ، فَقَالَتْ: حَلْ، اللَّهُمَّ الْعَنْهَا. فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (لَا تُصَاحِبْنَا نَاقَةٌ عَلَيْهَا لَعْنَةٌ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1560- Ji Ebû Berze Nedleyê kurê ‘Ubeydê Eslemî (r.), got: Wextekî, cariyeyek/qîzikek li ser deveheka ku hinek tişt û pertalê gel jî li ser wê

barkirî bû. Wextê ewê qîzikê Pêxemberê Xwedê (s.) dît û çiya jî li ber wan tengasiyê dike, ji devehê re got: Here, lanet lê hatiyê. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bila ew deveha lanet lê hatiyekirin bi me re hevaltiyê neke." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ جَوَاز لَعن أَصْحَاب الْمَعَاصِي غَيْرِ الْمُعَيَّنِين

## CAYIZBÛNA LANETANÎNA LI GUNEHKARAN BI ŞERTÊ BÊ KIFŞKIRIN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿أَلَا لَعْنَةُ الله عَلَى الظَّالِمِينَ﴾

"Bizanin! Bi rastî laneta Xwedê li sîtemkaran be."[1]

﴿فَأَذَّنَ مُؤَذِّنٌ بَيْنَهُمْ أَن لَّعْنَةُ الله عَلَى الظَّالِمِينَ﴾

"Paşê bangevanekî di nav wan de gazî kir: Bi rastî laneta Xwedê li sîtemkaran be."[2]

وَثبتَ فِي الصَّحِيحِ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (لعنَ الله الْوَاصلةَ وَالْمُسْتَوْصلة) وَأَنَّه قَالَ: (لعنَ الله آكلَ الرِّبَا) وَأَنَّه قَالَ: (لعنَ الله منْ غيَّرَ منارَ الأَرْضِ) أَي حدُودهَا، وَأَنَّه قَالَ: (لعنَ الله السَّارقُ يَسْرِقُ الْبَيْضَةَ) وَأَنَّه قَالَ: (لعنَ الله مَنْ لَعَنَ وَالِدَيْهِ) وَ (لَعَنَ الله مَنْ ذَبَحَ لِغَيْرِ اللَّهِ) وَأَنَّه قَالَ (مَنْ أَحْدَثَ فِيهَا حَدَثاً، أَوْ آوى محدثاً فعَلَيْهِ لَعْنَةُ اللَّهِ وَالْمَلَائِكَةِ وَالنَّاسِ أَجْمَعِينَ) وَأَنَّه قَالَ (اللَّهُمَّ الْعَنْ رعلاً، وَذكْوَانَ وَعصيَّةَ، عَصُوا الله ورَسُولَهُ) وَهِي: ثَلَاثُ قَبَائِلَ مِنَ الْعَرَبِ، وَأَنَّه قَالَ: (لَعَنَ الله الْيَهُودَ اتَّخذُوا قُبُورَ أَنْبِيَائهِمْ مَسَاجِدَ) وَأَنَّه (لَعَنَ الْمُتَشَبِّهِينَ مِنَ الرِّجَالِ بِالنِّسَاءِ، وَالْمُتَشَبِّهَاتِ مِنَ النِّسَاءِ بِالرِّجَالِ). وَجَمِيعُ هَذِهِ الأَلْفَاظِ فِي الصَّحِيحِ، وَبَعْضهَا فِي صَحِيحي الْبُخَارِي وَمُسْلِمٍ، وَبَعْضهَا فِي أَحدَهُمَا.

Di hedîsê sehîh de sabit bûye ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Laneta Xwedê li ser wê jinikê be ku pirçê bi porê jinikan ve girêdide û lanet hem

1 Hûd, 11/18.
2 E'raf, 7/44.

li ser wê jinikê be ku daxwaza vê çendê dike."

Dîsa Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedê lanetê li fayîzxwera bike."

Dîsa Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedê lanetê bike li kesê ku sînorê erdê xerab dike."

Dîsa Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedê lanetê bike li kesê ku hêkekê jî bidize."

Dîsa Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedê lanetê bike li wî kesê ku lanetê li dê û bavê tîne."

Dîsa Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedê lanetê bike li wî kesê ku ji bilî navê Xwedê bi navekî dîtir heywanekî ser jêdike."

Dîsa Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ki di Medînê de tiştekî bê rê derxe yan jî ki yê wiha biparêze; laneta Xwedê, ya milyaketan û ya temamê însanan li ser wî be."

Dîsa Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedayo! Tu lanetê bikî li her sê êlê 'Ereban ku Ri'l, Zekvan û Usayye ne. Ewanê ku ji emrê Xwedê û ji emrê Pêxemberê wî re asî bûn."

Dîsa Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedê lanetê li Cihûyan bike ku ewan gorê pêxemberê xwe gerandine mizgeft."

Dîsa Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedê lanetê bike li wan mêrên ku xwe dikin mîna jinan û li wan jinên ku xwe dikin mîna mêran." *Temamê van hedîsan sehîh in; hinekê wan di Buxarî û Muslim de hene û hinekên wan jî ji her dukan yekê de hene.*

## بَابُ تَحْرِيم سَبِّ الْمُسْلِم بِغَيْرِ حَقّ
## HERAMBÛNA ÇÊRKIRINA MISILMANAN BI NEHEQÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَالَّذِينَ يُؤْذُونَ الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ بِغَيْرِ مَا اكْتَسَبُوا فَقَدِ احْتَمَلُوا بُهْتَاناً وَإِثْماً مُبِيناً﴾

"Ewên bi neheqî û bê tawan eziyeta zilamên bawermend û jinên bawermend dikin, bi sond wan sîtem û bêbextiyeke mezin û guneheki zêde eşkere dikin."[1]

١٥٦١- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (سِبَابُ الْمُسْلِمِ فُسُوقٌ، وَقِتَالُهُ كُفْرٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1 Ehzab, 33/58.

1561- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Çêrkirina muslimani fisq e û şerkirina bi wî re jî kufr e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٦٢- وَعَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (لَا يَرمِي رَجُلٌ رَجُلاً بِالْفِسْقِ أَوِ الْكُفْرِ، إِلَّا ارْتَدَّتْ عَلَيْهِ، إِنْ لَمْ يَكُنْ صَاحِبُهُ كَذَلِكَ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1562- Ji Ebû Zerr (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye ku wiha digot: "Bila tu kes îthama tu kesî bi fisqê yan jî bi kufrê neke. Lewra eger kesê jê re ev gotin tê gotin ne wisa be ew gotin vedigere li ser gotoxê xwe ve." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٥٦٣- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (الْمُتَسَابَّانِ مَا قَالَا فَعَلَى الْبَادِي مِنْهُمَا حَتَّى يَعْتَدِيَ الْمَظْلُومُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1563- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Gunehê her du mirovên ku ji hevdu re çêr dikin li ser yê pêşiyê ye heta yê mezlûm ji heddê xwe derbas nebe." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٦٤- وَعَنْهُ قَالَ: أُتِيَ النَّبِيُّ ﷺ بِرَجُلٍ قَدْ شَرِبَ قَالَ: (اضْرِبُوهُ) قَالَ أَبُو هُرَيْرَةَ: فَمِنَّا الضَّارِبُ بِيَدِهِ، وَالضَّارِبُ بِنَعْلِهِ، وَالضَّارِبُ بِثَوْبِهِ، فَلَمَّا انْصَرَفَ، قَالَ بَعْضُ الْقَوْمِ: أَخْزَاكَ الله، قَالَ: (لَا تَقُولُوا هَذَا، لَا تُعِينُوا عَلَيْهِ الشَّيْطَانَ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1564- Dîsa ji wî (r.), got: Mirovekî şerabvexwer anîne hizûra Pêxemberê Xwedê (s.). Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Hûn lêxin." Ebû Hureyre dibêje: Vêca ji me hinekan bi destê xwe, hinekan bi sola xwe û hinekan jî bi kincê xwe li wî dan. Îcar wextê ew mirovê şerabxwer vegeriya ku here ji cema'etê hinekan gotin: Xwedê te bihetikîne/rezîl bike. Li ser vê gotinê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Hûn wisa nebêjin û hûn di dij û 'eleyhê wî de arîkariya şeytên nekin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٥٦٥- وَعَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ قَذَفَ مَمْلُوكَهُ بِالزِّنَى يُقَامُ عَلَيْهِ الحَدُّ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، إِلَّا أَنْ يَكُونَ كَمَا قَالَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

  

1565- Dîsa ji wî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Kesê îftira zinayê li xulamê xwe bike wê roja qiyametê bê cezadayin û eger ne wekî gotina wî be bê hed kirin.” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ تَحْرِيم سَبّ الأمْوَات بِغَيْرِ حَق وَمَصْلَحَةٍ شَرْعِيَّة

## HERAMBÛNA ÇÊRKIRINA MIRIYAN BI NEHEQÎ Û BÊ MESLEHETEKE ŞER‘Î

١٥٦٦- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَسُبُّوا الأَمْوَاتَ، فَإِنَّهُمْ قَدْ أَفضَوا إِلَى مَا قَدَّمُوا). رَوَاهُ البُخَارِي.

1566- Ji ‘Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn çêrê miriyan nekin. Lewra bêguman ew gihîştine kar û kiryarê xwe yê pêş de şandine.” *Buxarî riwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهي عَنِ الإيذَاء

## MEN‘KIRINA JI TA‘DEDAYINÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَالَّذِينَ يُؤْذُونَ الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ بِغَيْرِ مَا اكْتَسَبُوا فَقَدِ احْتَمَلُوا بُهْتَاناً وَإِثْماً مُبِيناً﴾

“Ewên bi neheqî û bê tawan eziyetê li mêrên bawermend û jinên bawermend dikin, bi sond wan sîtem û bêbextiyeke mezin û gunehekî zêde eşkere dikin.”[1]

١٥٦٧- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﵄ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (الْمُسْلِمُ مَنْ سَلِمَ الْمُسْلِمُونَ مِنْ لِسَانِهِ وَيَدِهِ، وَالْمُهَاجِرُ مَنْ هَجَرَ مَا نَهَى الله عَنْهُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1567- Ji ‘Ebdullahê kurê ‘Emrê kurê ‘As (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Misilman ew e ku misilman ji ziman û destê wî di silametiyê de ne. Û muhacir jî ew e ku tiştê Xwedê nehî kiriye terikandiye.” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٥٦٨- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ أَحَبَّ أَنْ يُزَحْزَحَ عَنِ النَّارِ، وَيُدْخَلَ الْجَنَّةَ،

1 Ehzab, 33/58.

فَلْتَأْتِهِ مَنِيَّتُهُ وَهُوَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الآخِرِ، وَلْيَأْتِ إِلَى النَّاسِ الَّذِي يُحِبُّ أَنْ يُؤْتَى إِلَيْهِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1568- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê bixwaze ku ji êgir bête dûrkirin û têkeve cennetê, bila di gava hatina mirinê de baweriya wî bi Xwedê û roja qiyametê hebe. Û bila tiştê ku dixwaze jê re bê dayin, bide însanan." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهيِ عَنِ التَّبَاغُضِ وَالتَّقَاطعِ وَالتَّدَابرِ

## NEHYA JI ENIRANDINÊ, JI PEYWENDÎ-BIRRÎNÊ Û JI PIŞTDAYINÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿إِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ إِخْوَةٌ﴾

"Bêşik bes bawermend birayên hevdu ne."[1]

﴿أَذِلَّةٍ عَلَى الْمُؤْمِنِينَ أَعِزَّةٍ عَلَى الْكَافِرِينَ﴾

"Ewana ji mu'minan re dilnerm in û ji kafiran re jî xurt û serbilind in."[2]

﴿مُحَمَّدٌ رَسُولُ اللَّهِ وَالَّذِينَ مَعَهُ أَشِدَّاءُ عَلَى الْكُفَّارِ رُحَمَاءُ بَيْنَهُمْ﴾

"Muhemmed Pêxemberê Xwedê ye. Ewên digel wî li dijberî kafiran dijwar in û di navbera xwe de dilovan in."[3]

١٥٦٩- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (لَا تَبَاغَضُوا، وَلَا تَحَاسَدُوا، وَلَا تَدَابَرُوا، وَلَا تَقَاطَعُوا، وَكُونُوا عِبَادَ اللَّهِ إِخْوَاناً، وَلَا يَحِلُّ لِمُسْلِمٍ أَنْ يَهْجُرَ أَخَاهُ فَوْقَ ثَلَاثٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1569- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Hûn buxz û 'edewata hevdu nekin, dexesiya hevdu nekin, pişta xwe nedin hevdu û peywendiya bi hevdu re neqetînin. Gelî 'îbadê Xwedê! Hûn ji hevdu re bira bin. Ji misilman re helal nîne ku ji sê rojan zêdetir bi birayê xwe re neaxive." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 Hucurat, 49/10.
2 Ma'îde, 5/54.
3 Fetih, 48/29.

١٥٧٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (تُفْتَحُ أَبْوَابُ الْجَنَّةِ يَوْمَ الاثْنَيْنِ وَيَوْمَ الْخَمِيسِ، فَيُغفَرُ لِكُلِّ عَبْدٍ لَا يُشْرِكُ بِاللَّهِ شَيْئاً، إِلَّا رَجُلاً كَانَتْ بَيْنَهُ وَبَيْنَ أَخِيهِ شَحْنَاءُ فَيُقَالُ: أَنظِرُوا هَذَيْنِ حَتَّى يَصْطَلِحَا، أَنظِرُوا هَذَيْنِ حَتَّى يَصْطَلِحَا). رَوَاهُ مُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ له: تُعْرَضُ الأَعْمَالُ فِي كُلِّ يَوْمِ خَمِيسٍ واثْنَيْنِ.

1570- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Roja duşem û pêncşemê deriyê cennetê vedibin. Vêca çiqas 'ebdê ku ji Xwedê re şirîkî neaniye tê bexişandin. Lê ew mirovê ku di navbera wî û birayê wî de bûxz û 'edewat hebe xaric. Vêca tê gotin: Hûn van her duyan heta li hevdu werin bihêlin, hûn van her duyan heta li hevdu werin bihêlin." *Muslim rîwayet kiriye.*

Di senedeke Muslim de: "Di her rojê duşem û pêncşema kar û 'emel têne pêşkêşkirin (zahir kirin)."

## بَابُ تَحْرِيمِ الْحَسَدِ

## HERAMBÛNA HESED/DEXESIYÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿أَمْ يَحْسُدُونَ النَّاسَ عَلَى مَا آتَاهُمُ الله مِنْ فَضْلِهِ﴾

"Yan naxwe hesûdiya xelkê dikin li ser wî tişê ku Xwedê kerema xwe digel wan kiriye."[1]

١٥٧١- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (إِيَّاكُمْ وَالْحَسَدَ، فَإِنَّ الْحَسَدَ يَأْكُلُ الْحَسَنَاتِ كَمَا تَأْكُلُ النَّارُ الْحَطَبَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ.

1571- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Hûn xwe ji hesedê û dexesiyê biparêzin. Lewra, çawa ku agir ardû dişewitîne, bêguman dexesî jî xêr û hesenatan dixwe." *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

1 Nîsa 4/54.

## بَابُ النَّهيِ عَنِ التَّجَسُّسِ والتَّسَمُّعِ لِكَلَامِ مَنْ يَكْرَه إِسْتِمَاعه

## NEHÎKIRINA JI MERAQ Û GUHDARÎKIRINA GOTINÊN WÎ KESÊ KU NAXWAZE KU GOTINÊN WÎ BÊNE SEHKIRIN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَلَا تَجَسَّسُوا﴾

"Hûn casûsiya hevdu nekin."[1]

﴿وَالَّذِينَ يُؤْذُونَ الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ بِغَيْرِ مَا اكْتَسَبُوا فَقَدِ احْتَمَلُوا بُهْتَاناً وَإِثْماً مُبِيناً﴾

"Ewên bi neheqî û bê tawan eziyeta zilamên bawermend û jinên bawermend dikin, bi sond wan sîtem û bêbextiyek mezin û gunehekî zêde eşkere kir."[2]

١٥٧٢ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِيَّاكُمْ وَالظَّنَّ، فَإِنَّ الظَّنَّ أَكْذَبُ الْحَدِيثِ، وَلَا تَحَسَّسُوا، وَلَا تَجَسَّسُوا وَلَا تَنَافَسُوا، وَلَا تَحَاسَدُوا، وَلَا تَبَاغَضُوا، وَلَا تَدَابَرُوا، وَكُونُوا عِبَادَ الله إِخْوَاناً كَمَا أَمَرَكُمْ، الْمُسْلِمُ أَخُو الْمُسْلِمِ، لَا يَظْلِمُهُ، وَلَا يَخْذُلُهُ وَلَا يَحْقِرُهُ، التَّقْوَى هَهُنَا، التَّقْوَى هَهُنَا) وَيُشِيرُ إِلَى صَدْرِهِ (بِحَسْبِ إِمْرِئٍ مِنَ الشَّرِّ أَنْ يَحْقِرَ أَخَاهُ الْمُسلِمَ، كُلُّ الْمُسْلِمِ عَلَى الْمُسْلِمِ حَرَامٌ: دَمُهُ، وَعِرْضُهُ، وَمَالُهُ، إِنَّ الله لَا يَنْظُرُ إِلَى أَجْسَادِكُم، وَلَا إِلَى صُوَرِكُمْ، وَلَكِنْ يَنْظُرُ إِلَى قُلُوبِكُم وَأَعْمَالِكُمْ).

وَفِي رِوَايَةٍ: (لَا تَحَاسَدُوا، وَلَا تَبَاغَضُوا، وَلَا تَجَسَّسُوا، وَلَا تَحَسَّسُوا، وَلَا تَنَاجَشُوا، وَكُونُوا عِبَادَ اللَّهِ إِخْوَاناً).

وَفِي رِوَايَةٍ: (لَا تَقَاطَعُوا، وَلَا تَدَابَرُوا، وَلَا تَبَاغَضُوا وَلَا تَحَاسَدُوا، وَكُونُوا عِبَادَ اللَّهِ إِخْوَاناً).

وَفِي رِوَايَةٍ: (لَا تَهَاجَرُوا وَلَا يَبِعْ بَعْضُكُمْ عَلَى بَيْعِ بَعْضٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ بِكُلِّ هَذِهِ الرِّوَايَاتِ، وَرَوَى الْبُخَارِي أَكْثَرَهَا.

1572- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn xwe ji zenn/gumanan biparêzin. Lewra guman derewtirînê axaftinê ye. Hûn li 'eyb û kêmasiyên hevdu negerin, bi hevdu re pêşbazî

---

1 Hucurat, 49/12.

2 Ehzab, 58/33.

nekin, dexesiya hevdu nekin, buxz û dijmînehiya hevdu nekin û pişta xwe nedin hevdu. Gelî 'îbadên Xwedê! Hûn bi biratî bibin bendeyê Xweda, çawa Xwedê emrê we kiriye. Misilman birayê misilman e; vêca zilmê lê nake, wî nahetikîne û ewî piçûk nake. Teqwa eva ye, teqwa eva ye." Pêxemberê Xwedê (s.) îşaret dike bi bal singa xwe ve. "Besî mirovî ye ji aliyê gunehî ve ku heqaretê li birayê xwe yê misilman bike. Temamê misilman; xûna wî, malê wî û namûsa wî li ser misilman heram e. Bêguman Xweda te'ala li beden û sûretên we nanêre, lê bes li qelbê we û 'emelê we dinêre."

Di senedekê de: Hûn dexesiya hevdu nekin, buxz û 'edewata hevdu nekin, casûsiya hevdu nekin, li 'eyb û kêmasiyên hevdu negerin û di kirrîn-firotinê de hîlê li hevdu nekin. Gelî 'îbadên Xwedê! Hûn ji hevdu re bira bin."

Di senedekê de: "Hûn peywendiya bi hevdu re neqetînin, pişta xwe nedin hevdu, buxz û dijminehiya hevdu nekin û dexesiya hevdu nekin. Gelî ebdên Xwedê! Hûn ji hevdu re bira bin."

Di senedekê de: Hûn hevdu neterikînin û bila hinek ji we jî bazara hinekan xerab nekin."

Muslim ev senedên hanê hemû rîwayet kiriye û Buxarî jî gelekên van senedan rîwayet kiriye.

١٥٧٣- وَعَنْ مُعَاوِيَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّكَ إِنِ اتَّبَعْتَ عَوْرَاتِ الْمُسْلِمِينَ أَفْسَدْتَهُمْ، أَوْ كِدْتَ أَنْ تُفْسِدَهُمْ). حَدِيثٌ صَحِيحٌ، رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1573- Ji Mu'awiye (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Bêguman eger tu 'eyb û kêmasiyên misilmana vekolî; tê wan yan xerab bikî yan jî nêzîkî xerabkirinê bikî." *Hedîseke sehîh e. Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٥٧٤- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ: أَنَّهُ أُتِيَ بِرَجُلٍ فَقِيلَ لَهُ: هَذَا فُلَانٌ تَقْطُرُ لِحْيَتُهُ خَمْراً، فَقَالَ إِنَّا قَدْ نُهِينَا عَنِ التَّجَسُّسِ، وَلَكِنْ إِنْ يَظْهَرْ لَنَا شَيْءٌ، نَأْخُذْ بِهِ. حَدِيثٌ صَحِيحٌ، رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ عَلَى شَرْطِ الْبُخَارِيِّ وَمُسْلِمٍ.

1574- Ji kurê Mes'ûd (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovek anîne bal wî ve û hate gotin: Evê ha ye yê ku ji riha wî şerab dilop dike. Ewî (r.) got: Men'a me ji casûsiyê hatiye kirin, lê eger tiştek ji me re kifş bibe em dê xwe bi wê bigirin û li gora wê hereket bikin. *Hedîseke sehîh e. Ebû Dawûd bi senedeke li ser şertê Buxarî û Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهي عَنْ سوء الظَنِّ بِالْمُسْلمين
## MEN'A JI ZENNA PÎS DI DERBARÊ MISILMANAN DE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا اجْتَنِبُوا كَثِيراً مِنَ الظَّنِّ إِنَّ بَعْضَ الظَّنِّ إِثْمٌ﴾

"Gelî ewên bawerî anîne! Xwe ji gelek gumanan biparêzin, bi rastî hinek guman guneh in."[1]

١٥٧٥ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِيَّاكُمْ وَالظَّنَّ، فَإِنَّ الظَّنَّ أَكْذَبُ الْحَدِيثِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1575- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn xwe ji zenn/gumane biparêzin. Lewra guman derewtirînê axaftinê ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ تَحْرِيم إِحْتِقَار الْمُسْلِمِينَ
## HERAMBÛNA PIÇÛKDÎTINA MISILMANAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا لَا يَسْخَرْ قَوْمٌ مِنْ قَوْمٍ عَسَى أَنْ يَكُونُوا خَيْراً مِنْهُمْ وَلَا نِسَاءٌ مِنْ نِسَاءٍ عَسَى أَنْ يَكُنَّ خَيْراً مِنْهُنَّ وَلَا تَلْمِزُوا أَنْفُسَكُمْ وَلَا تَنَابَزُوا بِالأَلْقَابِ بِئْسَ الإِسْمُ الْفُسُوقُ بَعْدَ الإِيمَانِ وَمَنْ لَمْ يَتُبْ فَأُولَئِكَ هُمُ الظَّالِمُونَ﴾

"Gelî ewên bawerî anîne! Bila tu zilam/qewm henekê xwe bi tu zilam/qewmî nekin. Dibe ewên ku tinaz pêtê kirin ji wanê tinazên xwe dikin çêtir bin. Û bila tu jin jî tinazên xwe bi tu jinan nekin. Dibe ewê ku tinaz pê tê kirin ji wanên henekê xwe dikin çêtir bin. Hevdu reş nekin, hevdu lekedar nekin û bi navlêkê kirêt gazî hevdu nekin. Çi pîs tişt e, mirov piştî bawerîanînê bi navê fisqê bê navkirin. Herkesê tobe neke, vêca ewê

---
1 Hucurat, 49/12.

  

sîtemkar ewana ne.”[1]

﴿وَيْلٌ لِكُلِّ هُمَزَةٍ لُمَزَةٍ﴾

“Nexweşî û îza ji bo herkesê ‘eybderêx û tanavêj e.”[2]

١٥٧٦-وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (بِحَسْبِ إِمْرِئٍ مِنَ الشَّرِّ أَنْ يَحْقِرَ أَخَاهُ الْمُسْلِمَ) رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1576- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Besî mirovî ye ji aliyê guneh ve ku heqaretê li birayê xwe yê misilman bike.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٧٦- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَا يَدْخُلُ الْجَنَّةَ مَنْ كَانَ فِي قَلْبِهِ مِثْقَالُ ذَرَّةٍ مِنْ كِبْرٍ) فَقَالَ رَجُلٌ: إِنَّ الرَّجُلَ يُحِبُّ أَنْ يَكُونَ ثَوْبُهُ حَسَناً، وَنَعْلُهُ حَسَنَةً، فَقَالَ: (إِنَّ اللَّهَ جَمِيلٌ يُحِبُّ الْجَمَالَ، الْكِبْرُ بَطَرُ الْحَقِّ، وَغَمْطُ النَّاسِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1577- Ji kurê Mes‘ûd (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: “Kî di dilê wî de qasî zerekê jî qurretî hebe, naçe cennetê.” Li ser vê yekê mirovekî got: Miheqeq mirov hez dike ku cilê wî rind be û sola wî rind be. Îcar Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Bêguman Xweda cemîl e/rind e û ji rindayê jî hez dike. Lêbelê qurretî, qebûlnekirina heqiyê û kêmdîtina însanan e.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٧٨- وَعَنْ جُنْدُبِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: قَالَ رَجُلٌ: (وَاللهِ لَا يَغْفِرُ اللهُ لِفُلَانٍ، فَقَالَ اللَّهُ عَزَّ وجَلَّ مَنْ ذَا الَّذِي يَتَأَلَّى عَلَيَّ أَنْ لَا أَغْفِرَ لِفُلَانٍ إِنِّي قَدْ غَفَرْتُ لَهُ، وَأَحْبَطْتُ عَمَلَكَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1578- Ji Cundubê kurê ‘Ebdullah (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Mirovekî gotiye: Bi sond, Xwedê te‘ala filankesê nabexşîne. Xwedê ‘ezze we celle jî dibêje: Ew çi kes e ewleyî dide ku ez filankesê nabexşînim. Bêguman min ew bexişand, lê min ‘emelê te jî pûç û betal kir.” *Muslim rîwayet kiriye.*

1 Hucurat, 49/11.
2 Humeze, 104/1.

## بَابُ النَّهيِ عَنْ إِظْهَارِ الشَّمَاتَةِ بِالْمُسْلِمِ
## MEN'A EŞKEREKIRINA ŞABÛNA BI XWEDANMUSBETBÛNA MISILMANEKÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿إِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ إِخْوَةٌ﴾

"Bêşik bes bawermend birayên hevdu ne."[1]

﴿إِنَّ الَّذِينَ يُحِبُّونَ أَنْ تَشِيعَ الْفَاحِشَةُ فِي الَّذِينَ آمَنُوا لَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ فِي الدُّنْيَا وَالآخِرَةِ﴾

"Ew kesên ku dixwazin bêheyayî (yanî fê'la xerab) di nav wan kesên ku bawerî anîne de belav bibe, di dunya û di axîretê de ji wan re 'ezabekî bi şewat heye." [2]

١٥٧٩ - وَعَنْ وَاثِلَةَ بْنِ الأَسْقَعِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تُظْهِرِ الشَّمَاتَةَ لِأَخِيكَ، فَيَرْحَمُهُ اللَّهُ وَيَبْتَلِيكَ) رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1579-Ji Wasileyê kurê Esqe' (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Tu bi xwedanmusîbet û xwedan-belabûna birayê xwe şa nebe, lewra dibe ku Xwedê te'ala rehmê li wî bike û te jî xwedanbela bike." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

## بَابُ تَحْرِيمِ الطَّعْنِ فِي الأَنْسَابِ الثَّابِتَةِ فِي ظَاهِرِ الشَّرْعِ
## HERAMBÛNA ŞERMANDINA DI NESEB Û REGEZÊ DE KU BI GORA ZAHIRÊ ŞER'Ê KIFŞ E

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَالَّذِينَ يُؤْذُونَ الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ بِغَيْرِ مَا اكْتَسَبُوا فَقَدِ احْتَمَلُوا بُهْتَاناً وَإِثْماً مُبِيناً﴾

"Ewên bi neheqî û bê tawan eziyeta zilamê bawermend û jinê bawermend dikin, bi sond wan sîtem û bêbextiyeke mezin û gunehekî zêde eşkere dikin."[3]

1 Hucurat, 49/10.
2 Nûr, 24/19.
3 Ehzab, 33/58.

١٥٨٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (اِثْنَتَانِ فِي النَّاسِ هُمَا بِهِمْ كُفْرٌ: الطَّعْنُ فِي النَّسَبِ، وَالنِّيَاحَةُ عَلَى الْمَيِّتِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1580- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Du xûy û xeslet di nav însanan de hene, ew herduk kufr in. (Yanî, ji kar û ‘emelê gawiran e): Reşkirina nesebê û qêrîn û lorandina li ser mirî bi dengê bilind.” *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهي عَن الغشِّ وَالْخِدَاعِ
## MEN‘A JI HÎLE Û XAPANDINÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَالَّذِينَ يُؤْذُونَ الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ بِغَيْرِ مَا اكْتَسَبُوا فَقَدِ احْتَمَلُوا بُهْتَاناً وَإِثْماً مُبِيناً﴾

“Ewên bi neheqî û bê tawan eziyeta zilamê bawermend û jinê bawermend dikin, bi sond wan sîtem û bêbextiyeke mezin û gunehekî zêde eşkere dikin.”[1]

١٥٨١- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ حَمَلَ عَلَيْنَا السِّلَاحَ، فَلَيْسَ مِنَّا، وَمَنْ غَشَّنَا، فَلَيْسَ مِنَّا). رَوَاهُ مُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ مَرَّ عَلَى صُبْرَةِ طَعَامٍ، فَأَدْخَلَ يَدَهُ فِيهَا، فَنَالَتْ أَصَابِعُهُ بَلَلاً، فَقَالَ: (مَا هذَا يَا صَاحِبَ الطَّعَامِ؟) قَالَ: أَصَابَتْهُ السَّمَاءُ يَا رَسُولَ اللَّهِ. قَالَ: (أَفَلَا جَعَلْتَه فَوْقَ الطَّعَامِ حَتَّى يَرَاهُ النَّاسُ مَنْ غَشَّنَا فَلَيْسَ مِنَّا).

1581- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kî sileha xwe li me bikşîne ew ne ji me ye û kî me bixapîne ew jî ne ji me ye.” *Muslim rîwayet kiriye.*

Di senedeke Muslim de: Pêxemberê Xwedê (s.) di ber komek zad re derbas bû, vêca destê xwe xiste nav wê komê de, lê tiliyên wî şil bûn. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Xwediyê zad, eva çi ye?” Xwediyê zad jî got: Ya Pêxemberê Xwedê, baran lê bariye. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Qey te nikaribû ku tu yê şil daynî ser da ku însanan bidîta. Kî me bixapîne, ew ne ji me ye.”

1 Ehzab, 33/58.

١٥٨٢ - وَعَنْهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا تَنَاجَشُوا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1582- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn bazarê li hevdu tûj nekin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٨٣ - وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ رضي الله عنه أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ نَهَى عَنِ النَّجَشِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1583- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) men'a ji tûjkirina bazarê kiriye. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٨٤ - وَعَنْهُ قَالَ: ذَكَرَ رَجُلٌ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ يُخْدَعُ فِي الْبُيُوعِ؟ فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (مَنْ بَايَعْتَ، فَقُلْ لَا خِلَابَةَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1584- Dîsa ji wî (r.), got: Mirovekî ji Pêxemberê Xwedê (s.) re behs kir ku di bazaran de tê xapandin. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Wextê te danûstandinek kir tu bêje: Xapandin tune." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

٥١٥٨ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ خَبَّبَ زَوْجَةَ إِمْرِئٍ، أَوْ مَمْلُوكَهُ، فَلَيْسَ مِنَّا). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ.

1585- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî jina mirovekî yan jî xulamê mirovekî bixapîne ji me nîne." *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَحْرِيمِ الْغَدْرِ

## HERAMBÛNA ŞIKANDINA SOZÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا أَوْفُوا بِالْعُقُودِ﴾

"Gelî ewên bawerî anîne! Peymanên xwe bi cih bînin."[1]

﴿وَأَوْفُوا بِالْعَهْدِ إِنَّ الْعَهْدَ كَانَ مَسْئُولاً﴾

"Peymana xwe bi cih bînin. Bi rastî pirsiyara peymanê wê ji we were kirin."[2]

1 Ma'îde, 5/1.
2 Îsra, 17/34.

١٥٨٦ - وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (أَرْبَعٌ مَنْ كُنَّ فِيهِ، كَانَ مُنَافِقاً خَالِصاً، وَمَنْ كَانَتْ فِيهِ خَصْلَةٌ مِنْهُنَّ، كَانَ فِيهِ خَصْلَةٌ مِنَ النِّفَاقِ حَتَّى يَدَعَهَا: إِذَا أُؤْتُمِنَ خَانَ، وَإِذَا حَدَّثَ كَذَبَ، وَإِذَا عَاهَدَ غَدَرَ، وَإِذَا خَاصَمَ فَجَرَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1586- Ji ‘Ebdullahê kurê ‘Emrê kurê ‘As (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kesê ku tê de çar xûy û xeslet hebin ew munafiqê xalis e û kesê ku tê de yek ji van her çar xesletan hebe bêguman di wî de jî nîşaneke munafiqiyê heye heta wê biterikîne: Wextê emanetek stand xiyanetê dike, dema axaft derew dike, wextê soz da nayne cih û wextê minaqeşe kir ji rê/heqiyê derdikeve.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٨٧ - وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ، وَابْنِ عُمَرَ، وَأَنَسٍ ﷺ قَالُوا: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (لِكُلِّ غَادِرٍ لِوَاءٌ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، يُقَالُ: هَذِهِ غَدْرَةُ فُلَانٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1587-Ji kurê Mes‘ûd û ji Îbnu ‘Umer û ji Enes (r.), gotin: Pêxember (s.) gotiye: “Ji bo her xayînekî alayek heye û tê gotin: Eva nankoriya filankesî ye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٨٨ - وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (لِكُلِّ غَادِرٍ لِوَاءٌ عِنْدَ إِسْتِهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ يُرْفَعُ لَهُ بِقَدْرِ غَدْرِهِ، أَلَا وَلَا غَادِرَ أَعْظَمُ غَدْراً مِنْ أَمِيرِ عَامَّةٍ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1588- Ji Ebû Se‘îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: “Ji bo her bêbextekî re roja qiyametê ber pişta wî alayek heye ku bi qasî bêbextiya wî tê rakirin: Hûn agahdar bin ku tu bêbext mezintir nîne ji bêbextiya mîrê karûbarê gel e.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٨٩ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (قَالَ اللَّهُ تَعَالَى: ثَلَاثَة أَنَا خَصْمُهُم يَوْمَ القِيَامَةِ: رَجُلٌ أَعْطَى بِي ثُمَّ غَدَرَ، وَرَجُلٌ بَاعَ حُرًّا فَأَكَلَ ثَمَنَهُ، وَرَجُلٌ اِسْتَأْجَرَ أَجِيراً، فَاسْتَوْفَى مِنْهُ، وَلَمْ يُعْطِهِ أَجْرَهُ) رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1589- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxember (s.) gotiye: “Xwedayê te‘ala gotiye: “Sê qisim însan hene, ez roja qiyametê dijminê wan im: Mirovê ku bi navê min sond bixwe û paşê sonda xwe pêk nayne, mirovê ku yekî azad bifroşe

û bihayê wî jî bixwe û yek jî ew mirovê ku karkerekî dide xebatê û karê xwe pê dide damezrandinê, lê dawiyê jî heqdesta wî nadê." *Buxarî riwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهي عَنِ المَنّ بِالْعَطِيَةِ
## NEHYA JI MINETKIRINA BI BEXŞ Û ARÎKARIYÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا لا تُبْطِلُوا صَدَقَاتِكُمْ بِالْمَنِّ وَالأَذَى﴾

"Gelî ewên bawerî anîne! Xêr û qenciyên (sedeqeyên) xwe bi minet û ezyetê pûç nekin."[1]

﴿الَّذِينَ يُنْفِقُونَ أَمْوَالَهُمْ فِي سَبِيلِ اللَّهِ ثُمَّ لَا يُتْبِعُونَ مَا أَنْفَقُوا مَنّاً وَلَا أَذىً﴾

"Ewê malê xwe di rêya Xwedê de dimezêxin, ne dikine minet û ne jî dikine ezyet..."[2]

١٥٩٠ - وَعَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (ثَلَاثَةٌ لَا يُكَلِّمُهُمُ الله يَوْمَ الْقِيَامَةِ، وَلَا يَنْظُرُ إِلَيْهِمْ، وَلَا يُزَكِّيهِمْ، وَلَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ). قَالَ: فَقَرَأَهَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ ثَلَاثَ مَرَّاتٍ. قَالَ أَبُو ذَرٍّ: خَابُوا وَخَسِرُوا مَنْ هُمْ يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: (الْمُسْبِلُ، وَالمَنَّانُ، وَالْمُنفِّقُ سِلْعَتَهُ بِالْحَلِفِ الْكَاذِبِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ لَهُ: (الْمُسْبِلُ إِزَارَهُ) يَعْنِي: الْمُسْبِلُ إِزَارَهُ وَثَوْبَهُ أَسْفَلَ مِنَ الْكَعْبَيْنِ لِلْخُيَلَاءِ.

1590- Ji Ebû Zerr (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Sê qisim însan Xwedê te'ala roja qiyametê bi wan re naaxive, li wan nanihêre û ewan tezkiye nake. 'ezabekî dilsoj jî ji wan re ye." Û Pêxemberê Xwedê (s.) eva sê caran xwend. Ebû Zerr got: Ewê xesirîne ew kî ne ya Pêxemberê Xwedê? Ewî (s.) jî got: "Ew mirovê ku bi qurretî kincê xwe bi erdê re dixişikîne û yek jî ew mirovê ku minetê dike û yek jî ew mirovê ku bi sonda derewan malê xwe difroşe." *Muslim riwayet kiriye.*

Di senedeke Muslim de: Kesê bi qurretî pêşmalk û kincê xwe ji gûzekên xwe berjêrtir dike.

1 Beqere, 2/264.
2 Beqere, 2/262.

# بَابُ النَّهي عَنْ الإفْتِخَار وَالْبَغِي
# NEHYA JI QURRETÎ Û NEHEQIYÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿فَلَا تُزَكُّوا أَنْفُسَكُمْ هُوَ أَعْلَمُ بِمَنِ اتَّقَى﴾

"Vêca xwe paqij nedêrin û medhê xwe nekin, ew çêtir dizane ka kî bi teqwa ye."[1]

﴿إِنَّمَا السَّبِيلُ عَلَى الَّذِينَ يَظْلِمُونَ النَّاسَ وَيَبْغُونَ فِي الأَرْضِ بِغَيْرِ الْحَقِّ أُولَئِكَ لَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ﴾

"Ew rê (lome û lomedarî), bes li ser ewê zordayiyê li xelkê dikin û bi neheqî xwe li erdê mezin dikin û xerabî û destdirêjayê tê de li ser can û malê xelkê dikin. Evan, 'ezabekî bi jan û dijwar ji bo wan e (roja qiyametê)."[2]

١٥٩١- وَعَنْ عِيَاضِ بْنِ حِمَارٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى أَوْحَى إِلَيَّ أَنْ تَوَاضَعُوا حَتَّى لَا يَبْغِيَ أَحَدٌ عَلَى أَحَدٍ، وَلَا يَفْخَرَ أَحَدٌ عَلَى أَحَدٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1591- Ji 'Iyazê kurê Himar (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman Xweda te'ala ji min re wehî kir ku hûn ji hevdu re wisa dilnizmiyê bikin ku kes neheqiyê li kesî neke û kes qurretiyê li ser kesî neke." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٩٢- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا قَالَ الرَّجُلُ: هَلَكَ النَّاسُ، فَهُوَ أَهْلَكُهُمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1592- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê mirovek bibêje: 'Însan çûne helakê.' ew, ji wan bêhtir diçe helakê." *Muslim rîwayet kiriye.*

1 Necm, 53/32.
2 Şûra, 42/42.

## بَابُ تَحْرِيمِ الْهِجْرَانِ بَيْنَ الْمُسْلِمِينَ فَوْقَ ثَلَاثَةِ أَيَّامٍ

## HERAMBÛNA XEYDA JI SÊ ROJAN ZÊDETIR

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿إِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ إِخْوَةٌ فَأَصْلِحُوا بَيْنَ أَخَوَيْكُمْ﴾

"Bêşik bes bawermend birayên hevdu ne. Vêca hûn di nav birayên xwe de aşitiyê çêbikin.[1]

﴿وَلَا تَعَاوَنُوا عَلَى الإِثْمِ وَالْعُدْوَانِ﴾

"Hûn li ser guneh û destdirêjayê arîkarê hevdu nebin."[2]

١٥٩٣- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَقَاطَعُوا، وَلَا تَدَابَرُوا، وَلَا تَبَاغَضُوا، وَلَا تَحَاسَدُوا، وَكُونُوا عِبَادَ اللَّهِ إِخْوَاناً، وَلَا يَحِلُّ لِمُسْلِمٍ أَنْ يَهْجُرَ أَخَاهُ فَوْقَ ثَلَاثٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1593- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn peywendiya bi hevdu re neqetînin, pişta xwe nedin hevdu, buxz û 'edewata hevdu nekin û dexesiya hevdu nekin. Gelî 'îbadên Xwedê! Hûn ji hevdu re bira bin. Ji misilman re ne helal e ku ji sê rojan zêdetir bi birayê xwe re neaxive." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٥٩٤- وَعَنْ أَبِي أَيُّوبَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا يَحِلُّ لِمُسْلِمٍ أَنْ يَهْجُرَ أَخَاهُ فَوْقَ ثَلَاثِ لَيَالٍ يَلْتَقِيَانِ، فَيُعْرِضُ هَذَا وَيُعْرِضُ هَذَا، وَخَيْرُهُمَا الَّذِي يَبْدَأُ بِالسَّلَامِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1594- Ji Ebû Eyyûb (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ji misilman re ne helal e ku ji sê şevên pey hevdu zêdetir bi birayê xwe re neaxive. Vêca ew rastî hevdu werin yek berê xwe vegerîne vî alî û yê din jî berê xwe vegerîne aliyê din ve. Çêtirê wan ew e ku dest bi silavê dike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 Hucurat, 49/10.
2 Ma'îde, 5/2.

١٥٩٥- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (تُعْرَضُ الأَعْمَالُ فِي كُلِّ اِثْنَيْنِ وَخَمِيسٍ، فَيَغْفِرُ الله لِكُلِّ إمْرِئٍ لَا يُشْرِكُ بِاللَّهِ شَيْئاً، إِلَّا إِمْرَءاً كَانَت بَيْنَهُ وَبَيْنَ أَخِيهِ شَحْنَاءُ، فَيَقُولُ: اِتْرُكُوا هَذَينِ حَتَّى يَصْطَلِحَا). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1595- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Di her rojên duşem û pêncşema de kar û 'emel têne pêşkêşkirin (zahir kirin). Vêca çiqas 'ebdê ku ji Xwedê re şirîkî çênekiriye tê bexişandin. Lê ew mirovê ku navbera wî û birayê wî de bûxz û 'edewat hebe xaric. Vêca tê gotin: Hûn wan her duyan heta li hevdu werin bihêlin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٩٦- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ الشَّيْطَانَ قَدْ يَئِسَ أَنْ يَعْبُدَهُ الْمُصَلُّونَ فِي جَزِيرَةِ الْعَرَبِ، ولَكِنْ فِي التَّحْرِيشِ بَيْنَهُمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1596- Ji Cabir (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Bêguman şeytan ji îbadetkirina nimêjkeran jê re di Cezîretul-'Ereb de bêhêvî bûye. Lê ew, ji bo fitne û fesadiyê wê bixebite." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٩٧- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا يَحِلُّ لِمُسْلِمٍ أَنْ يَهْجُرَ أَخَاهُ فَوْقَ ثَلَاثٍ، فَمَنْ هَجَرَ فَوْقَ ثَلاثٍ، فَمَاتَ دَخَلَ النَّارَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ عَلَى شَرْطِ الْبُخَارِي.

1597- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin wî got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ji misilman re ne helal e ku ji sê rojan zêdetir bi birayê xwe re neaxive. Vêca kesê ku ji sê rojan zêdetir bi birayê xwe re neaxive û bimre, wê here cehennemê." *Ebû Dawûd li ser şertê Buxarî û Muslim rîwayet kiriye.*

١٥٩٨- وَعَنْ أَبِي خِرَاشٍ حَدْرَدِ بْنِ أَبِي حَدْرَدٍ الأَسْلَمِي، وَيُقَالُ السُّلَمِي الصَّحَابِي ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ هَجَرَ أَخَاهُ سَنَةً فَهُوَ كَسَفْكِ دَمِهِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1598- Ji Ebû Xiraşê Hedredê kurê Ebû Hedredê Eslemî, ku jê re tê gotin Suleymiyê Sehabî (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Pêxember (s.) bihîstiye wiha digot: "Kî salekê ji birayê xwe bixeyîde, ew xeyda wî mîna rijandina xûna wî ye." *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٥٩٩- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا يَحِلُّ لِمُؤْمِنٍ أَنْ يَهْجُرَ مُؤْمِناً فَوْقَ ثَلَاثٍ، فَإِنْ مَرَّتْ بِهِ ثَلَاثٌ، فَلْيَلْقَهُ، فَلْيُسَلِّمْ عَلَيْهِ، فَإِنْ رَدَّ عَلَيْهِ السَّلَامَ، فَقَدِ اشْتَرَكَا فِي الأَجْرِ، وَإِنْ لَمْ يَرُدَّ عَلَيْهِ، فَقَدْ بَاءَ بِالإِثْمِ، وَخَرَجَ الْمُسَلِّمُ مِنَ الْهِجْرَةِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

قَالَ أَبُو دَاوودَ: إِذَا كَانَتِ الْهِجْرَةُ لِلهِ تَعَالَى فَلَيْسَ مِنْ هَذَا فِي شَيْءٍ.

1599- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Ji mu’min re ne helal e ku ji sê rojan zêdetir bi mu’min re neaxive. Eger sê roj derbas bûn û vêca rastî ewî hat bila silavê bidê. Îcar eger wî mirovî; silava wî hilda ew herduk di xêrê de hevparê hevdu ne, lê eger silava wî hilneda ew mirovê silav hilnedayî gunehkar bûye û yê silav dayî jî ji gunehê xeydê derketiye.” *Ebû Dawûd bi senedek sehîh rîwayet kiriye.*

Ebû Dawûd gotiye: Xeyd, wextê ji bona Xwedê be tê de guneh tune.

## بَابُ النَّهيِ عَنْ تَنَاجِي اثْنَين دُونَ الثَّالِث

## NEHYA JI PISTEPISTA DU MERIVAN BÊ DESTÛRDANA HEVALÊ WANÊ SISIYAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿إِنَّمَا النَّجْوَى مِنَ الشَّيْطَانِ﴾

“Bi rastî pistepist ji şeytan e.”[1]

١٦٠٠- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا كَانُوا ثَلَاثَةً، فَلَا يَتَنَاجَى اثْنَانِ دُونَ الثَّالِثِ) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

وَرَوَاهُ أَبُو دَاودَ وَزَادَ: قَالَ أَبُو صَالِحٍ: قُلْتُ لِابْنِ عُمَرَ: فَأَرْبَعَةً؟ قَالَ: لَا يَضُرُّكَ.

وَرَوَاهُ مَالِكٌ فِي (الْمُوَطَّأ): عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ دِينَارٍ قَالَ: كُنْتُ أَنَا وَابْنُ عُمَرَ عِنْدَ دَارِ خَالِدِ بْنِ عُقْبَةَ الَّتِي فِي السُّوقِ، فَجَاءَ رَجُلٌ يُرِيدُ أَنْ يُنَاجِيَهُ، وَلَيْسَ مَعَ ابْنِ عُمَرَ أَحَدٌ غَيْرِي، فَدَعَا ابْنُ

1 Mucadele, 58/10.

عُمَرَ رَجُلاً آخَرَ حَتَّى كُنَّا أَرْبَعَةً، فَقَالَ لِي وَلِلرَّجُلِ الثَّالِثِ الَّذِي دَعَا: اسْتَأْخِرَا شَيْئاً، فَإِنِّي سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (لَا يَتَنَاجَى اثْنَانِ دُونَ وَاحِدٍ).

1600- Ji Îbnu ‘Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê sê mirov li cihekî bin, bila du mirov bê destûra yê sisiyan pistepistê nekin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Ebû Dawûd rîwayet kiriye û zêde kiriye: Ebû Salih gotiye: Min ji Îbnu ‘Umer (r.) re got: Lê wextê çar mirov bin çawa ye? ‘Ebdullah (r.) got: Zerar nake.

Malik di Muwettayê de ji ‘Ebdullahê kurê Dînar rîwayet kiriye ku ewî gotiye: Ez û ‘Ebdullahê Îbnu ‘Umer (r.) bal xaniyê Xalidê kurê ‘Uqbe bûn, ew xaniyê ku di sûkê de bû. Vêca mirovek hat, xwest ku bi dizî ve digel ‘Ebdullah biaxive. Li cem ‘Ebdullahê Îbnu ‘Umer (r.) jî ji xeynê min tu kes tunebû, vêca ‘Ebdullah gazî mirovekî din jî kir heta em bûne çar mirov. ‘Ebdullah ji min û ji wî mirovê sisiyan re got: Hûn hinekî paşve herin, lewra min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Bila du mirov bê destûra yekî din pistepistê nekin.”

١٦٠١- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا كُنْتُمْ ثَلَاثَةً، فَلَا يَتَنَاجَى اثْنَانِ دُونَ الآخَرِ حَتَّى تَخْتَلِطُوا بِالنَّاسِ، مِنْ أَجْلِ أَنَّ ذَلِكَ يُحْزِنُهُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1601- Ji kurê Mes‘ûd (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê hûn bûn sê mirov, heta hûn têkilî însanan nebin bila du mirov bêyî yê din pistepistê nekin. Lewra ev pistepist ewî mirovî mehzûn dike.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ النَّهيِ عَنْ تَعْذِيبِ الْعَبْدِ وَالدَّابَةِ وَالْمَرْأَةِ وَالْوَلَدِ بِغَيْرِ سَبَبٍ شَرْعِي

## NEHYA JI TAHDEKIRINA LI XULAMAN, HEYWANAN, JINAN Û LI ZAROKAN BÊ SEDEMEKE ŞER‘Î

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَبِالْوَالِدَيْنِ إِحْسَاناً وَبِذِى الْقُرْبَى وَالْيَتَامَى وَالْمَسَاكِينَ وَالْجَارِ ذِى الْقُرْبَى وَالْجَارِ الْجُنُبِ وَالصَّاحِبِ بِالْجَنْبِ وَابْنِ السَّبِيلِ وَمَا مَلَكَتْ أَيْمَانُكُمْ إِنَّ الله لَا يُحِبُّ مَنْ

كَانَ مُخْتَالاً فَخُوراً﴾

"Qenciyê digel dê û bav û eqrebayên xwe bikin. Hem qenciyê digel sêwiyan, belengazan, cîranê xwe yê nêzîk (çi ji aliyê xonî ve, çi ji aliyê nesebê ve û çi jî ji cîhetên din ve be.) û yê dûr, hevalên cem xwe, rêwî (yên ku mêvan in) û hem wanê ku di bin destê we de (kole û cariye) ne."[1]

١٦٠٢- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﵄ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (عُذِّبَتِ إمْرَأَةٌ فِي هِرَّةٍ حَبَسَتْهَا حَتَّى مَاتَتْ، فَدَخَلَتْ فِيهَا النَّارَ، لَا هِيَ أَطْعَمَتْهَا وَسَقَتْهَا، إِذْ حَبَسَتْهَا، وَلَا هِيَ تَرَكَتْهَا تَأْكُلُ مِنْ خَشَاشِ الأَرْضِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1602- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Jinikek hatiye 'ezabdan bi sedem pisîkekê ku wê jinikê ew pisîk hepis kiribû heta ew pisîk mirar/hişk bû. Vêca sedemê wê çendê ew jinik çû cehennemê ku ewê jinikê ne xwarin û ne jî vexwarin dida wê pisîkê û ne lihêla ku jî ew pisîk dihêla ku here ji kêzik û bihokê erdê bixwe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٠٣- وَعَنْهُ: أَنَّهُ مَرَّ بِفِتْيَانٍ مِنْ قُرَيْشٍ قَدْ نَصَبُوا طَيْراً وَهُمْ يَرْمُونَهُ، وَقَدْ جَعَلُوا لِصَاحِبِ الطَّيْرِ كُلَّ خَاطِئَةٍ مِنْ نَبلِهِمْ، فَلَمَّا رَأَوُا ابْنَ عُمَرَ تَفَرَّقُوا، فَقَالَ ابْنُ عُمَرَ: مَنْ فَعَلَ هَذَا؟ لَعَنَ الله مَنْ فَعَلَ هَذَا، إنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ لَعَنَ مَنِ اتَّخَذَ شَيْئاً فِيهِ الرُّوحُ غَرَضاً). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1603- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku ew di ber hinek xortên Qureyşiyan re derbas bû ku wan çivîkek çikandibûn tîrê xwe diavêtine wê û kesê ku tîra wî li wê çivîkê neketa ewî tiştek dida xwediyê çivîkê. Wextê wan xortan Îbnu 'Umer (r.) dîtin ji hev belav bûn. Îcar Îbnu 'Umer (r.) got: Kê eva kiriye? Xwedê le'nata xwe lê bike. Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) lanet kiriye li wî kesê ku tiştekî ku tê de ruh heye xistiye hedef û alet. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٠٤- وَعَنْ أَنَسٍ ﵁ قَالَ: نَهَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ أَنْ تُصْبَرَ الْبَهَائِمُ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1604- Ji Enesê kurê Malik (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) nehî kiriye ku heywan bêne hepis kirin. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 Nîsa, 4/36.

  

١٦٠٥- وَعَنَ أَبِي عَلِيٍّ سُوَيْد بْنِ مُقرِّن ﷺ قَالَ لَقَدْ رَأَيْتنِي سَابِعَ سَبْعةٍ مِنْ بَنِي مُقَرِّن مَالَنَا خَادِمٌ إلَّا وَاحِدَةٌ لَطَمَها أَصْغَرُنَا، فَأَمَرَنَا رَسُولُ الله ﷺ أَنْ نُعْتِقَهَا.

وَفِي رِوَايةٍ: (سَابِعَ إِخْوَةٍ لِي). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1605- Ji Ebû ‘Elî Suweydê kurê Muqerrin (r.), got: Ez ji heft kurê Muqerrin yê piçûk bûm û xulamekî me tenê hebû. Piçûkê me şeqamek lê dabû, li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) emrê me kir ku em wî xulamî azad bikin. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٦٠٦- وَعَنْ أَبِي مَسْعُودٍ الْبَدْرِيِّ ﷺ قَالَ: كُنْتُ أَضْرِبُ غُلَاماً لِي بِالْسَّوْطِ، فَسَمِعْتُ صَوْتاً مِنْ خَلْفِي: (اِعْلَمْ أَبَا مَسْعُودٍ) فَلَمْ أَفْهَمِ الصَّوْتَ مِنَ الْغَضَبِ، فلَمَّا دَنَا مِنِّي إذَا هُوَ رَسُولُ الله ﷺ فَإِذَا هُوَ يَقُولُ: (اِعْلَمْ أَبَا مَسْعُودٍ، اِعْلَمْ أَبَا مَسْعُودٍ) قَالَ: فَأَلْقَيْتُ السَّوْطَ مِنْ يَدِي، فَقَالَ: (اِعْلَمْ أَبَا مَسْعُودٍ أَنَّ الله أَقْدَرُ عَلَيْكَ مِنْكَ عَلَى هَذَا الْغُلامِ) فَقُلْتُ: لَا أَضْرِبُ مَمْلُوكاً بَعْدَهُ أَبَداً.

وَفِي رِوَايَةٍ: فَسَقَطَ مِنْ يَدِي السَّوْطُ مِنْ هَيْبَتِهِ. وَفِي رِوَايَةٍ: فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ الله هُوَ حُرٌّ لِوَجْهِ اللَّهِ تَعَالَى، فَقَالَ: (أَمَّا لَوْ لَمْ تَفْعَلْ، لَلَفَحَتْكَ النَّارُ، أَوْ لَمَسَّتْكَ النَّارُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1606- Ji Ebû Mes‘ûdê Bedrî (r.), got: Min bi qemçûyî li xulamê xwe dida û min ji paş xwe ve dengek seh kir: Tu bizan, ya Ebû Mes‘ûd! Min ji ber xişm û xezeba deng pak fêm nekir. Wextê nêzîkî min bû min dît ku ew Pêxemberê Xwedê (s.) ye û wiha dibêje: “Tu bizan, ya Ebû Mes‘ûd! Tu bizan, ya Ebû Mes‘ûd!” Ebû Mes‘ûd dibêje: Min qemçû ji destê xwe avêt. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Tu bizan ya Ebû Mes‘ûd, ku Xwedê te‘ala şiyandartir e li ser te ji şiyandariya te ya li ser vî xulamî.” Ebû Mes‘ûd dibêje: Min got: Êdî ez ji vir û pêde tu carî li tu xulamî naxim.

Di senedekê de: Ji ber heybeta Pêxemberê Xwedê (s.) qemçûyê min ji destê min kete xwarê.

Di senedekê de: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê, ew xulam ji bo riza Xwedê azad e. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: “Eger te ev yeka nekira (yanî, te ew azad nekira) wê agir tu bişewitandayî yan jî wê agirê cehennemê tu bigirtayî.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٦٠٧- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (مَنْ ضَرَبَ غُلَاماً له حَداً لَمْ يَأْتِهِ، أَو لَطَمَهُ، فَإِنَّ كَفَّارَتَهُ أَنْ يُعْتِقَهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1607- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Kê bê xeta û bê guneh li xulamê xwe bixê yan jî şeqamekê lê bide, bêguman kefaretê wê azadkirina wî xulamî (koleyî) ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٦٠٨- وَعَنْ هِشَامِ بْنِ حَكِيمِ بْنِ حِزَامٍ ﷺ: أَنَّهُ مَرَّ بِالشَّامِ عَلَى أُنَاسٍ مِنَ الأَنْبَاطِ، وَقَدْ أُقِيمُوا فِي الشَّمْسِ، وَصُبَّ عَلَى رُؤُوسِهِم الزَّيْتُ فَقَالَ: مَا هَذَا؟ قِيلَ: يُعَذَّبُونَ فِي الْخَرَاجِ، وَفِي رِوَايَةٍ: حُبِسُوا فِي الْجِزيَةِ. فَقَالَ هِشَامٌ: أَشْهَدُ لَسَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ اللَّهَ يُعَذِّبُ الَّذِينَ يُعَذِّبُونَ النَّاسَ فِي الدُّنْيَا) فَدَخَلَ عَلَى الأَمِيرِ، فَحَدَّثَهُ، فَأَمَرَ بِهِم فَخُلُّوا. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1608- Ji Hîşamê kurê Hekîmê kurê Hizam (r.) hatiye rîwayetkirin ku ew li Şamê di ber hinek felahan re derbas bû ku ew felah hatibûn cikandin û sekinandin li ber rojê û li ser serê wan jî qîr hatibû rijandin. Vêca Hîşam got: Eva çi ye? Hate gotin: Bi sedem xeracê têne 'ezabdan. Di senedekê de: Bi sedem cizyê hatine hepiskirin. Vêca Hîşam got: Ez şehadetê didim ku min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye, wiha digot: "Bêguman Xweda te'ala, wan kesê ku di dunyayê de 'ezabê didin însanan 'ezabdar dike." Û Hîşam çû bal mîr û ev hedîsa jê re got. Mîr jî emrê berdana wan kir û ew hatin berdan. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٦٠٩- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: رَأَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ حِمَاراً مَوْسُومَ الْوَجْهِ، فَأَنْكَرَ ذَلِكَ، فَقَالَ: (وَاللَّهِ لَا أَسِمُهُ إِلَا أَقْصَى شَيْءٍ مِنَ الْوَجْهِ، وَأَمَرَ بِحِمَارِهِ، فَكُوِيَ فِي جَاعِرَتَيْهِ) فَهُوَ أَوَّلُ مَنْ كَوَى الجَاعِرَتَيْنِ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1609- Ji kurê 'Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) kerek dît ku rûyê wî hatibû daxkirin. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) ev yeka pir kirêt dît. Li ser vê yekê 'Ebbas got: Bi sond, êdî ezê dûrê rûyê wê dax bikim. Û emir da ku kerê wî ji kulîmekê xwe bê dax kirin. 'Ebdullahê kurê 'Ebbas (r.) e yê ku pêşiyê kulîmek dax kiriye. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٦١٠- وَعَنْهُ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ: مَرَّ عَلَيْهِ حِمَارٌ قَدْ وُسِمَ فِي وَجْهِهِ، فَقَالَ: (لَعَنَ الله الَّذِي وَسَمَهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ أَيْضاً: نَهَى رَسُولُ الله ﷺ عَنِ الضَّرْبِ فِي الْوَجْهِ، وَعَنِ الْوَسْمِ فِي الْوَجْهِ.

1610- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku di ber Pêxember (s.) re kerek derbas bû ku rûyê wî hatibû dax kirin. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Xwedê te‘ala lanetê bike li kesê ku ev kera wiha dax kiriye.” *Muslim rîwayet kiriye.*

Dîsa di senedeke Muslim de: Pêxemberê Xwedê (s.) ji lêdana rû û ji daxkirina rû nehî kiriye.

## بَابُ تَحْرِيمِ التَّعْذِيبِ بِالنَّارِ فِي كُلِّ حَيْوَانٍ

## HERAMBÛNA ‘EZABDANA HER HEYWANÎ BI AGIRÎ

١٦١١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: بَعَثَنَا رَسُولُ الله ﷺ فِي بَعْثٍ فَقَالَ: (إِنْ وَجَدْتُم فُلَاناً وَفُلاناً- لِرَجُلَيْنِ مِنْ قُرَيْشٍ سَمَّاهُمَا- فَأَحْرِقُوهُمَا بِالنَّارِ) ثُمَّ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ حِينَ أَرَدْنَا الخُرُوجَ: (إِنِّي كُنْتُ أَمَرْتُكُمْ أَنْ تُحْرِقُوا فُلَاناً وَفُلاناً، وَإِنَّ النَّارَ لَا يُعَذِّبُ بِهَا إِلَّا الله، فَإِنْ وَجَدْتُمُوهُمَا فَاقْتُلُوهُمَا). رَوَاهُ البُخَارِي.

1611- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) em di nava nejdeyekê de şandin herbê û got: “Eger we ji Qureyşiyan filan kes û filan kes dîtin –Pêxemberê Xwedê (s.) ew her du mirov bi nav dikirin– hûn wan her duyan bişewitînin.” Paşê wextê me xwest ku em herin, Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Min emrê we kiribû ku hûn filan kesî û filan kesî bişewitînin, lê agir bes Xwedê pê ezab dide. Vêca eger hûn rastî wan hatin wan bikujin.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٦١٢- وَعنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: كُنَّا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي سَفَرٍ، فَانْطَلَقَ لِحَاجَتِهِ، فَرَأَيْنَا حُمَّرَةً مَعَهَا فَرْخَانِ، فَأَخَذْنَا فَرْخَيْهَا، فَجَاءَتِ الحُمَّرَةُ فَجَعَلَتْ تَعْرِشُ، فَجاءَ النَّبِيُّ ﷺ فَقَالَ: (مَنْ فَجَعَ هَذِهِ بِوَلَدِهَا؟ رُدُّوا وَلَدَهَا إِلَيْهَا) وَرَأَى قَرْيَةَ نَمْلٍ قَدْ حَرَّقْنَاهَا، فَقَالَ: (مَنْ حَرَّقَ هَذِهِ؟) قُلْنَا: نَحْنُ، قَالَ:(إِنَّهُ لَا يَنْبَغِي أَنْ يُعَذِّبَ بِالنَّارِ

إِلَّا ربُّ النَّارِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1612- Ji kurê Mes‘ûd (r.), got: Em di seferekê de digel Pêxemberê Xwedê (s.) bûn. Pêxemberê Xwedê (s.) ji bo destavê dûrket çû. Di wê demê de çivîkek ku digel wê du ferxikê wê hebûn me dît. Vêca me her du ferxikê wê girtin, (wextê ew çivîk hat ferxikê xwe nedît) ji ber jana wan perê xwe li hevda û bû çîq çîqa wê. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) hat û got: “Kê ev çivîka bi sedem ferxikê wê êşandî ye? Hûn ferxikê wê bidinê.” Pêxemberê Xwedê (s.) carekê jî morîstaneke ku me şewitandibû dît û got: “Kê eva şewitandiye?” Me got: Me. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Bêguman çênabe ku ji xeynê Rebbê êgir tu kes bi êgir ezab bide.” *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَحْرِيم مَطْلُ الْغَنِيِّ بِحَقٍّ طَلَبَهُ صَاحِبهُ

## HERAMBÛNA DERENGXISTINA DEWLEMENDÎ, DEYNÊ DEYNDÊRÎ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿إِنَّ اللَّهَ يَأْمُرُكُم أَنْ تُؤَدُّوا الأَمَانَاتِ إِلَى أَهْلِهَا﴾

“Bêguman Xweda, emrî we dike ku hûn emanetan bidin ehlê wan.”[1]

﴿فَإِنْ أَمِنَ بَعْضُكُمْ بَعْضاً فَلْيُؤَدِّ الَّذِى اؤْتُمِنَ أَمَانَتَهُ﴾

“Heger hûn ji hevdu emîn bûn, vêca bila ewê xwedanê deynî baweriya xwe bi dayiyê (ku deyndar e) deynê xwe bîne.”[2]

١٦١٣- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُول الله ﷺ قَالَ: (مَطْلُ الغَنِيِّ ظُلمٌ، وَإِذَا أُتبعَ أَحَدُكُم عَلَى مَلِيءٍ فَلْيَتْبَع). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1613- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Derengxistina kesê dewlemend deynê xwe neheqî ye. Wextê yek ji we hate hewale kirin li ser maldarekî ve bila qebûl bike.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 Nîsa, 4/58.
2 Beqere, 2/283.

  

## بَابُ كَرَاهة عَوْدَة الإِنْسَانْ فِي هِبَةٍ لَمْ يُسَلِّمهَا
## MEKRÛHBÛNA VEGERANDINA ÎNSANÎ HÎBA XWE YA KU TESLÎM NEKIRIYE

١٦١٤- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (الَّذِي يَعُودُ فِي هِبَتِهِ كَالكَلبِ يَرجعُ فِي قَيْئِهِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: (مَثَل الَّذِي يَرْجعُ فِي صَدَقَتِهِ، كَمَثَلِ الْكَلْبِ يَقِيءُ، ثمَّ يَعُودُ فِي قَيْئِهِ فيأْكُلُهُ).

وَفِي رِوَايَةٍ: (الْعائِدُ فِي هِبَتِهِ كَالْعَائِدِ فِي قَيئِهِ).

1614- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ew kesê ku hîbe û bexşa xwe vedigerîne mîna wî seyê ku vereşana xwe dixwe ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di senedekê de: "Mesela wî kesê ku sedeqa xwe vedigerîne, mîna wî seyê ku vedireşe, paşê li vereşana xwe dizvire û wê vereşana xwe dixwe ye."

Di senedekê de: "Poşmanbûyê ji hîba xwe, wekî vegeroxê li vereşiya xwe ye."

١٦١٥- وَعَنْ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ ﷺ قَالَ: حَمَلْتُ عَلَى فَرسٍ فِي سَبِيلِ اللَّهِ فَأَضَاعَهُ الَّذِي كَانَ عِنْدَه، فَأَرَدْتُ أَنْ أَشْتَرِيَهُ، وَظَنَنْتُ أَنَّهُ يَبِيعُهُ بِرُخْصٍ، فَسَأَلْتُ النَّبِيَّ ﷺ فَقَالَ: (لَا تَشْتَرِهِ وَلا تَعُدْ فِي صَدَقَتِكَ وَإِنْ أَعْطَاكَهُ بِدِرْهَمٍ، فَإِنَّ الْعَائِدَ فِي صَدَقَتِهِ كَالْعَائِدِ فِي قَيْئِهِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1615- Ji 'Umerê kurê Xettab (r.), got: Min di rêya Xwedê de ji bo cîhadê hespek dabû mirovekî. Îcar ewî mirovî çavnêrî li wê hespê nekiribû û ew hespa baş xwedî nekiribû. Vêca min xwest ku ez wê hespê ji wî bikirim û min zen dikir ku wê erzan bifroşe. Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) pirsiyar kir, ewî (s.) got: "Ew mirov wê hespê bi dirhemekî jî bide te tu wê nekire û ji sedeqa xwe venegere. Lewra vegirkerê sedeqa xwe wekî vegirkerê vereşana xwe ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

# بَابُ تَأكِيد تَحْرِيم مَال الْيَتِيم
# HERAMBÛNA XWARINA MALÊ SÊWIYAN

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿إِنَّ الَّذِينَ يأْكُلُونَ أَمْوَالَ الْيَتَامَى ظُلْماً إِنَّمَا يَأكُلُوْنَ فِي بُطُونِهِمْ نَاراً وَسَيَصْلَوْنَ سَعِيراً﴾

"Ewên malê sêwiyan bi neheqî dixwin, bi rastî tenê ew zikê xwe tijî agir dikin. Û dê ew biçine agirê cehennemê."[1]

﴿وَلَا تَقْرَبُوا مَالَ الْيَتِيمِ إِلَّا بِالَّتِي هِيَ أَحْسَنُ﴾

"Nêzîkî malê sêwî nebin eger ji bo xêra wî nebe."[2]

﴿وَيَسْأَلُونَكَ عَنِ الْيَتَامَى قُلْ إِصْلَاحٌ لَهُمْ خَيْرٌ وَإِنْ تُخَالِطُوهُمْ فَإِخْوَانكُمْ والله يَعْلَمُ الْمُفْسِدَ مِنَ الْمُصْلِحِ﴾

"Pirsiyara sêwiyan ji te dikin, bêje: Qencî digel wan çêtir e. Heger hûn malê wan digel yê xwe têkil bikin (pêkve bijîn) ew birayên we ne. Xwedê xerab û qencan ji hev nas dike."[3]

١٦١٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (اِجْتَنِبُوا السَّبْعَ الْمُوبِقَاتِ) قَالُوا: يَا رَسُولَ الله وَمَا هُنَّ؟ قَالَ: (الشِّرْكُ بِاللَّهِ، وَالسِّحْرُ، وَقَتْلُ النَّفْسِ الَّتِي حَرَّمَ الله إِلَّا بِالْحَقِّ، وَأَكْلُ الرِّبَا، وَأَكْلُ مَالِ الْيَتِيمِ، وَالتَّوَلِّي يَوْمَ الزَّحْفِ، وَقَذْفُ الْمُحْصَنَاتِ الْمُؤْمِنَاتِ الْغَافِلَاتِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1616- ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Hûn xwe biparêzin ji heft tiştên ku dibin sedemê helakê." Li ser vê yekê sehabiyan gotin: Ya Pêxemberê Xwedê, ew çi ne? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Şirka ji Xwedê re, sihîr, bi neheqî kuştina canekî ku Xwedê heram kiriye, xwarina ribayê, xwarina malê yêtîman, reva ji meydana herbê di roja herbê de û yek jî îftira zinayê li jina mu'mina paqij ku haya wê tiştekî tuneye bike." *Buxari û Muslim rîwayet kirine.*

1 Nîsa, 4/10.
2 En'am, 6/152.
3 Beqere, 2/220.

  

## بَابُ تَغْلِيظ تَحْرِيم الرِّبَا
## HERAMBÛNA RIBAYÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿الَّذِينَ يَأْكُلُونَ الرِّبَا لَا يَقُومُونَ إِلَّا كَمَا يَقُومُ الَّذِى يَتَخَبَّطُهُ الشَّيْطَانُ مِنَ الْمَسِّ ذَلِكَ بِأَنَّهُمْ قَالُوا إِنَّمَا الْبَيْعُ مِثْلُ الرِّبَا وأَحَلَّ الله الْبَيْعَ وَحَرَّمَ الرِّبَا فَمَنْ جَاءَهُ مَوْعِظَةٌ مِنْ رَبِّهِ فَانْتَهَى فَلَهُ مَا سَلَفَ وَأَمْرُهُ إِلَى اللَّهِ وَمَنْ عَادَ فأُولَٰئِكَ أَصْحَابُ النَّارِ هُمْ فِيهَا خَالِدُونَ ۞ يَمْحَقُ الله الرِّبَا وَيُرِبِي الصَّدَقَاتِ- إِلَى قَوْلِهِ -: يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا اتَّقُوا اللَّهَ وَذَرُوا مَا بَقِيَ مِنَ الرِّبَا﴾

"Ewên ribayê dixwin, wekî wî yê ku şeytanî bi pelandin ew dînkiriye û hingaftiye radibin. Lewra ewan digot: Hemû kirrîn û firotin jî wekî ribayê ye. Xweda, kirrîn û firotin dirust kiriye û riba dirust nekiriye. Vêca yê şîreta Xwedê gihîştê û dev ji ribayê berda, hukmê tişta borî (riba cahiliyetê) Xwedê lê nagre û ew di destê Xwedê de ye. Heçî yê lê bizvire ewana ehlê êgir in. Her û her dê tê de bimînin. Xwedê ribayê bê bereket dike û malê xêr û sedeqe jî bê dayin zêde dike û bereketê dixê. Xwedê hez ji zêde gawir û têrgunehan nake. Bi rastî ewê bawerî anîne, kar û kiryarê qenc kirine, berdewam nimêj kirine û zekata malê xwe dane, evan, xelatê wan li cem Xwedê heye. (Roja qiyametê) ne tirs li ser wan heye û ne jî xemgîn dibin."[1]

١٦١٧- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: لَعَنَ رَسُولُ الله ﷺ آكِلَ الرِّبَا وَمُوكِلَهُ. رَوَاهُ مُسْلِمْ.

زَادَ التِّرْمِذِيُّ وَغَيْرُهُ: (وَشَاهِدِيهِ وَكَاتِبَهُ).

1617- Ji kurê Mes‘ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) lanet li xwarî û dayiyê ribayê kiriye." *Muslim rîwayet kiriye.*

Tirmizî û xeynê wî zêde kirine: "Li şahid û nivîskarê wê be jî."

1 Beqere, 2/275-278.

## بَابُ تَحْرِيمِ الرِّيَاءِ
## HERAMBÛNA DURÛTIYÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿وَمَا أُمِرُوا إِلَّا لِيَعْبُدُوا اللَّهَ مُخْلِصِينَ لَهُ الدِّينَ حُنَفَاءَ﴾

"Ewana, bes hatibûn emir kirin ku ji Xweda re xalîsane îbadetê bikin"[1]

﴿لَا تُبْطِلُوا صَدَقَاتِكُمْ بِالْمَنِّ وَالأَذَى كَالَّذِي يُنْفِقُ مَالَهُ رِئَاءَ النَّاسِ﴾

"Gelî ewên bawerî anîne! Xêr û qenciyên (sedeqeyên) xwe bi minet û ezyetê pûç nekin, wekî ewê ku malê xwe ji bo rûmetî dimezixînin."[2]

﴿يُرَاؤُونَ النَّاسَ وَلَا يَذْكُرُونَ اللَّهَ إِلَّا قَلِيلاً﴾

"Bi sistî radibin û pêş çavê xelkê nimêj dikin, kêm car nebin Xwedê nayînine bîra xwe."[3]

١٦١٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﵁ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (قَالَ الله تَعَالَى: أَنَا أَغْنَى الشُّرَكَاءِ عَنِ الشِّرْكِ، مَنْ عَمِلَ عَمَلاً أَشْرَكَ فِيهِ مَعِي غَيْرِي، تَرَكْتُهُ وَشِرْكَهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1618- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Xwedayê te‘ala gotiye: Ez dewlemendtirê şirîka me ji şirkê. Kî kar û kiryarekî bike û xeynê min jî di wî karî de bixe şirîkê min, ezê wî mirovî hêviya şirka wî bihêlim." *Muslim riwayet kiriye.*

١٦١٩- وَعَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ أَوَّلَ النَّاسِ يُقْضَى يَوْمَ الْقِيَامَةِ عَلَيْهِ، رَجُلٌ اسْتُشْهِدَ، فَأُتِيَ بِهِ، فَعَرَّفَهُ نِعْمَتَهُ، فَعَرَفَهَا، قَالَ: فَمَا عَمِلْتَ فِيهَا؟ قَالَ: قَاتَلْتُ فِيكَ حَتَّى اسْتُشْهِدْتُ، قَالَ: كَذَبْتَ، وَلكِنَّكَ قَاتَلْتَ لأَنْ يُقَالَ: جَرِيءٌ، فَقَدْ قِيلَ، ثُمَّ أُمِرَ بِهِ، فَسُحِبَ عَلَى وَجْهِهِ حَتَّى أُلْقِيَ فِي النَّارِ، وَرَجُلٌ تَعَلَّمَ الْعِلْمَ وَعَلَّمَهُ، وَقَرَأَ الْقُرْآنَ، فَأُتِيَ بِهِ، فَعَرَّفَهُ نِعَمَهُ فَعَرَفَهَا. قَالَ: فَمَا عَمِلْتَ فِيهَا؟ قَالَ: تَعَلَّمْتُ الْعِلْمَ وَعَلَّمْتُهُ، وَقَرَأْتُ

1 Beyyîne, 98/5.
2 Beqere, 2/264.
3 Nîsa, 4/142.

فِيكَ الْقُرْآنَ، قَالَ: كَذَبْتَ، وَلكِنَّكَ تَعَلَّمْتَ لِيُقَالَ: عَالِمٌ، وَقَرَأْتَ الْقُرْآنَ لِيُقَالَ: هُوَ قَارِئٌ، فَقَدْ قِيلَ، ثُمَّ أُمِرَ بِهِ، فَسُحِبَ عَلَى وَجْهِهِ حَتَّى أُلْقِيَ فِي النَّارِ، وَرَجُلٌ وَسَّعَ الله عَلَيْهِ، وَأَعْطَاهُ مِنْ أَصْنَافِ الْمَالِ، فَأُتِيَ بِهِ فَعَرَّفَهُ نِعَمَهُ، فَعَرَفَهَا. قَالَ: فَمَا عَمِلْتَ فِيهَا؟ قَالَ: مَا تَرَكْتُ مِنْ سَبِيلٍ تُحِبُّ أَنْ يُنْفَقَ فِيهَا إِلَّا أَنْفَقْتُ فِيهَا لَكَ، قَالَ: كَذَبْتَ، وَلَكِنَّكَ فَعَلْتَ لِيُقَالَ: هُوَ جَوَادٌ، فَقَدْ قِيلَ، ثُمَّ أُمِرَ بِهِ فَسُحِبَ عَلَى وَجْهِهِ ثُمَّ أُلْقِيَ فِي النَّارِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1619- Dîsa ji wî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Di roja qiyametê de yê berê pêşîn ji însanan bê berpirsiyar kirin (sê qisim însan in). Yek ew mirovê ku hatiye şehîd kirin e. Ew mirov wê were anîn. Xwedê nîmetê ku dayiyê wê bihejmêre û ewê jî ewan nîmetan qebûl û îqrar bike. Vêca Xwedê te'ala wê bêje: Lê te li hemberî wan nîmetan çi kir? Ew mirovê bibêje: Min di rêya te de şer kir heta ku ez hatim şehîd kirin. Xwedê te'ala wê bibêje: Te derew kir. Lê te şer kir da ku ji te re bê gotin çi mirovekî dilawer e. Û wisa jî hatiye gotin. Paşê Xwedê emr da, ku ew mirov li ser rûyê xwe bê kişandin heta ku bê avêtin di êgir de. Û yek ew mirovê ku hînî 'ilmê bûye û 'ilm daye hînkirin û Qur'an xwendiye. Ew mirov wê were anîn. Xwedê nîmetên ku dayiyê wê bihejmêre û ewê jî ewan nîmetan qebûl û îqrar bike. Vêca Xwedê te'ala wê bêje: Lê te li hemberî wan nîmetan çi kir? Ew mirovê bibêje: Ez 'ilm hînbûm û min 'ilm da hînkirin û min ji bo riza te Qur'an xwend. Xwedê te'ala wê bibêje: Te derew kir. Lê tu 'ilm hîn bûyî da ku ji te re bê gotin çi mirovekî zanyar e. Û te Qur'an xwend da ku ji te re bê gotin çi mirovekî qarî' e. Û wisa jî hatiye gotin. Paşê Xwedê emr da, ku ew mirov li ser rûyê xwe bê kişandin heta ku bê avêtin di êgir de. Û yek jî ew mirovê ku Xwedê destfireyî dayê û cure cure mal dayê ye. Ew mirov wê were anîn. Xwedê nîmetê ku dayê wê bihejmêre û ewê jî wan nîmetan qebûl û iqrar bike. Vêca Xwedê te'ala wê bêje: Lê te li hemberî wan nîmeta çi kir? Ew mirovê bibêje: Min rêyên ku tu hez dikî tê de mal bê mezixandin nehêla, miheqeq min di wan rêyan de mal mezixand. Xwedê te'ala wê bibêje: Te derew kir. Lê te bi durûtî dimezixand ku ji te re bê gotin çi mirovekî camêr e. Û wisa jî hatiye gotin. Paşê Xwedê emr da, ku ew mirov li ser rûyê xwe bê kişandin heta ku bê avêtin di êgir de." *Muslim riwayet kiriye.*

١٦٢٠- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ: أَنَّ نَاساً قَالُوا لَهُ: إِنَّا نَدْخُلُ عَلَى سَلاطِينِنَا فَنَقُولُ لَهُمْ

بِخِلَافِ مَا نَتَكَلَّمُ إِذَا خَرَجْنَا مِنْ عِنْدِهِمْ؟ قَالَ ابْنُ عُمَرَ ﷺ: كُنَّا نَعُدُّ هَذَا نِفَاقاً عَلَى عَهْدِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1620- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku hinek însanan ji wî (r.) re gotin: Em diçine hizûra sultan û serokê xwe, vêca em ji wan re li dij û xilafa gotinê xwe yê ku wextê em ji cem wan radibin dibêjin. Îbnu 'Umer (r.) got: Me eva di dewra Pêxemberê Xwedê (s.) de munafiqî dizanî. *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٦٢١- وَعَنْ جُنْدُبِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ سُفْيَانَ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (مَنْ سَمَّعَ سَمَّعَ اللهُ بِهِ، وَمَنْ يُرَائِي يُرَائِي اللهُ بِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1619- Ji Cundubê kurê 'Ebdullahê kurê Sufyan (r.), got: Pêxember (s.) gotiye: "Kî kar û 'emelê xwe bi însanan bide sehkirin wê Xwedê te'ala jî ewî rezîl û riswa bike û kî jî durûtiyê bike Xwedê te'ala jî di roja qiyametê de rewşa wî ya dizî wê teşhîr bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٢٢- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ تَعَلَّمَ عِلْماً مِمَّا يُبْتَغَى بِهِ وَجْهُ اللهِ عَزَّ وَجَلَّ، لَا يَتَعَلَّمُهُ إِلَّا لِيُصِيبَ بِهِ عَرَضاً مِنَ الدُّنْيَا، لَمْ يَجِدْ عَرْفَ الْجَنَّةِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1622- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî, wî 'ilmê ku pê rizaya Xwedê tê daxwazkirin bes ji bo gihîştina mebest û armanceke dunyayê xwe hîn bike, ew kes di roja qiyametê de bêhna cennetê bêhn nake." *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

## بَابُ مَا يَتَوهم أَنَّهُ رِيَاء وَلَيْسَ هُوَ رِيَاء
## EW TIŞTÊ TÊ ZENKIRIN KU DURÛTÎ YE LÊBELÊ NE DURÛTÎ YE

١٦٢٣- عَنْ أَبِي ذَرٍّ ﷺ قَالَ: قِيلَ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ: أَرَأَيْتَ الرَّجُلَ يَعْمَلُ الْعَمَلَ مِنَ الْخَيْرِ، وَيَحْمَدُهُ النَّاسُ عَلَيْهِ؟ قَالَ: (تِلْكَ عَاجِلُ بُشْرَى الْمُؤْمِنِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1623- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Ji Pêxemberê Xwedê (s.) re hate gotin: Ka tu çi dibêjî ji bo wî mirovê ku kiryarekî qenc dike û xelk jî li ser wê kirina wî ya qenc pesnê wî dide? Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Eva ji bona mu'min mizgîniyeke bi lez e." *Muslim rîwayet kiriye.*

  

## بَابُ تَحْرِيم النَّظَر إلَى الْمَرْأَة الأَجْنَبِيَة
## HERAMBÛNA NÊRÎNA LI JINIKA BIYANÎ Û XERÎB

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿قُلْ لِلْمُؤْمِنِينَ يَغُضُّوا مِنْ أَبْصَارِهِمْ﴾

"Ji bawermendan re biêje, bila çavê (ji heramîyan) re bigrin."[1]

﴿إِنَّ السَّمْعَ وَالْبَصَرَ وَالْفُؤَادَ كُلُّ أُولَئِكَ كَانَ عَنْهُ مَسْئُولاً﴾

"Bi rastî guh, çav û dil hemû ji wê berpirs e."[2]

﴿يَعْلَمُ خَائِنَةَ الأَعْيُنِ وَمَا تُخْفِي الصُّدُورُ﴾

"Xwedê, xiyaneta çavan û ya di dilan de veşartî jî dizane."[3]

﴿إِنَّ رَبَّكَ لَبِالْمِرْصَادِ﴾

"Xwedayê te, her çavdêrê wan e"[4]

١٦٢٤- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (كُتِبَ عَلَى ابْنِ آدَمَ نَصِيبُهُ مِنَ الزِّنَا مُدْرِكٌ ذَلِكَ لَا مَحَالَةَ: الْعَيْنَانِ زِنَاهُمَا النَّظَرُ، وَالأُذُنَانِ زِنَاهُمَا الإِسْتِمَاعُ، وَاللِّسَانُ زِنَاهُ الْكَلامُ، وَالْيَدُ زِنَاهَا الْبَطْشُ، وَالرِّجْلُ زِنَاهَا الخُطَا، وَالْقَلْبُ يَهْوَى وَيَتَمَنَّى، وَيُصَدِّقُ ذَلِكَ الْفَرْجُ أَوْ يُكَذِّبُهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1624- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Li ser însan nesibê wî ji zinayê hatiye nivîsandin û miheqeq wê însan bigihêje nesibê xwe: Zinaya her du çavan nezer e. (Bi şehwet nêrîna li jina xerîb e.) Zinaya her du guhan guhdirêjkirin e. Zinaya zimên axaftin e. Zinaya dest bi şehwet lebatê jina xerîb girtin e. Zinaya ling çûyin e û qelb jî dixwaze û niyaz dike. Lê ferc evê daxwaza qelb yan tesdîq dike û yan jî mandel dike." ***Buxarî û Muslim riwayet kirine.***

١٦٢٥- وَعَنْ أَبِي سَعِيدِ الْخُدْرِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِيَّاكُمْ وَالْجُلُوسَ فِي الطُّرُقَاتِ)

1 Nûr, 24/30.
2 Îsra, 17/36.
3 Xafir, 40/19.
4 Fecr, 89/14.

قَالُوا: يَا رَسُولَ الله مَا لَنَا مِنْ مَجَالِسِنَا بُدّ، نَتَحَدَّثُ فِيهَا، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (فَإِذَا أَبَيْتُمْ إِلَّا الْمَجْلِسَ، فَأَعْطُوا الطّرِيقَ حَقَّهُ) قَالُوا: وَمَا حَقُّ الطَّرِيقِ يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: (غَضُّ الْبَصَرِ، وَكَفُّ الأَذَى، وَرَدُّ السَّلَامِ، وَالأَمْرُ بِالْمَعْرُوفِ، وَالنَّهيُ عَنِ الْمُنكَرِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1625- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Hûn xwe ji rûniştina ser rêyan dûr bikin." Sehabiyan gotin: "Ya Pêxemberê Xwedê! Ma emê çilo xwe ji rêyan dûr bikin, em bi tenê li wan deran dicivin û bi hevdu re xeber didin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: Wextê we xwest hûn rûnin, wî çaxî heqê rê bidin." Gotin: "Ya Pêxemberê Xwedê! Heqê rê çi ye?" Ewî (s.) got: "Çav berjêrkirin e, nedana zerarê ye, vedana silavê ye, emrê bi qenciyê û qedexekirina neqenciyê ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٢٦- وَعَنْ أَبِي طَلْحَةَ زَيْدِ بْنِ سَهْلٍ ﷺ قَالَ: كُنَّا قُعُوداً بِالأَفْنِيَةِ نَتَحَدَّثُ فِيهَا فَجَاءَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَامَ عَلَيْنَا فَقَالَ: (مَا لَكُمْ وَلِمَجَالِسِ الصُّعُدَاتِ؟ اجْتَنِبُوا مجَالِسَ الصُّعُداتِ) فَقُلْنَا: إِنَّمَا قَعَدْنَا لِغَيْرِ مَا بَأْس، قَعَدْنَا نَتَذَاكَرُ، وَنتَحَدَّثُ. قَالَ: (إِمَّا لَا فَأَدُّوا حَقَّهَا: غَضُّ الْبَصَرِ، وَرَدُّ السَّلَامِ، وَحُسْنُ الْكَلَامِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1626- Ji Ebû Telhe Zeydê kurê Sehl (r.), got: Em di hewşê de rûniştîûn û me xeber dida. Pêxemberê Xwedê (s.) hat, li ser me sekinî û got: "Çi bûye ji we ku hûn di hevrazan de rûdinên? Hûn xwe ji rûniştina di hevrazan de biparêzin." Vêca me got: Em ji bo tiştek xerab rûnanin, bes em rûdinin ji bo ku em biaxivin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Eger hûn nikaribin, îcar heqê rê bidin: Çav berjêrkirin e, vedana silavê ye û axaftina xweş e." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٦٢٧- وَعَنْ جَرِير ﷺ قَالَ: سَأَلْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ عَنْ نَظَرِ الْفَجْأَةِ فَقَالَ: (اصْرِفْ بَصَرَكَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1627- Ji Cerîr (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) pirsa mêzekirina ji nişkave kir. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu çavê xwe vegerîne." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٦٢٨- وَعَنْ أُمِّ سَلَمَةَ ﷺ قَالَتْ: كُنْتُ عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَعِنْدَهُ مَيْمُونَةُ، فَأَقْبَلَ ابْنُ

  

أُمِّ مَكْتُومٍ، وَذَلِكَ بَعْدَ أَنْ أُمِرْنَا بِالْحِجَابِ فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (احْتَجِبَا مِنْهُ) فَقُلْنَا: يَا رَسُولَ اللهِ، أَلَيْسَ هُوَ أَعْمَى لَا يُبْصِرُنَا، وَلَا يَعْرِفُنَا؟ فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (أَفَعَمْيَاوَانِ أَنْتُمَا أَلَسْتُمَا تُبْصِرَانِهِ؟). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1628- Ji Ummu Seleme (r.), got: Ez û Meymûnete em li cem Pêxemberê Xwedê (s.) bûn. Vêca kurê Ummu Mektum hat, ku ev bûyer jî piştî ku emrê nixumandinê ji me re hatibû. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Hûn xwe ji vî, binixumînin." Me jî got: Ya Pêxemberê Xwedê, qey ew ne kor e? Ne me dibîne û ne jî me nas dike. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Qey hûn herdu jî kor in û wî nabînin?" *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e û sehîh e.*

١٦٢٩- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا يَنْظُرُ الرَّجُلُ إِلَى عَوْرَةِ الرَّجُلِ، وَلَا الْمَرأَةُ إِلَى عَوْرَةِ الْمَرْأَةِ، وَلَا يُفْضِي الرَّجُلُ إِلَى الرَّجُلِ فِي ثَوْبٍ وَاحِدٍ، وَلَا تُفْضِي الْمَرْأَةُ إِلَى الْمَرْأَةِ فِي الثَّوْبِ الْوَاحِدِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1629- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bila mêr berê xwe nede 'ewretê mêr û bila jin jî berê xwe nede 'ewretê jinê. Bila du mêr di nav nivînekê de ranezin û bila du jin jî di nav nivînekê de ranezin." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَحْرِيمِ الْخَلْوَةِ بِالأَجْنَبِيَّةِ

## HERAMBÛNA TENÊMAYINA (XELWETA) DIGEL JINA XERÎB

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَإِذَا سَأَلْتُمُوهُنَّ مَتَاعاً فَاسْأَلُوهُنَّ مِنْ وَرَاءِ حِجَابٍ﴾

"Wextê we hewceyek ji jinê Pêxember xwest yan we xwest ku hûn bi wan re biaxivin, li pişt perdeyê ji wan bixwazin yan biaxivin."[1]

١٦٣٠- وَعَنْ عُقْبَةَ بْنِ عَامِرٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِيَّاكُمْ وَالدُّخُولَ عَلَى النِّسَاءِ) فَقَالَ رَجُلٌ مِنَ الأَنْصَارِ: أَفَرَأَيْتَ الحَمْوَ؟ قَالَ: (الْحَمْوُ الْمَوْتُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1 Ehzab, 33/53.

1630- Ji ‘Uqbeyê kurê ‘Amir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn xwe biparêzin ji çûyina cem jina (ku digel wan mehremê wan tunebin).” Li ser vê gotinê mirovekî got: Lê ji bo hemwê (yanî, eqrebayê mêrê wê) çi dibêjî? Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: “Hemw mirin e (yanî, hemw mîna mirinê sedemê fitnê ye).” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦١٣- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا يَخْلُوَنَّ أَحَدُكُمْ بِامْرَأَةٍ إِلَّا مَعَ ذِي مَحْرَمٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1631- Ji kurê ‘Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Bila tu kes ji we bi jinekê re tenê nemîne, ji bilî ku digel mehremê wê be.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٣٢- وَعَنْ بُرَيْدَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (حُرْمَةُ نِسَاءِ الْمُجَاهِدِينَ عَلَى الْقَاعِدِينَ كَحُرْمَةِ أُمَّهَاتِهِمْ، مَا مِنْ رَجُلٍ مِنَ الْقَاعِدِينَ يَخْلُفُ رَجُلاً مِنَ الْمُجَاهِدِينَ فِي أَهْلِهِ، فَيَخُونُهُ فِيهِمْ إِلَّا وَقَفَ لَهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، فَيَأْخُذُ مِنْ حَسَنَاتِهِ مَا شَاءَ حَتَّى يَرْضَى) ثُمَّ الْتَفَتَ إِلَيْنَا رَسُولُ الله ﷺ فَقَالَ: (مَا ظَنُّكُمْ؟). رَوَاهُ مُسْلِم.

1632- Ji Bureyde (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hurmeta jinên mucahidan li ser kesê qa‘id (şûndemayî) wekî hurmeta dayikên wan e. Tu mêrê li malê maye, ku li pey mêrê mucahid ve zar û zêçên wî biparêze, vêca di derbarê ehlê wî de lê bêbextiyê bike miheqeq wê roja qiyametê ji bo wî mucahidî be rawestandin. Îcar mucahid çiqasî bivê wê ji xêr û hesenatên wî hilde heta razî bibe.” Paşê jî Pêxemberê Xwedê (s.) berê xwe da me û got: “Zenna we çi ye (gelo, wê tu xêrê ji wî re bihêle)?” *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَحْرِيم تَشَبُّهِ الرِّجَال بِالنِّسَاء وَتَشَبُّهِ النِّسَاء بِالرِّجَال

## HERAMBÛNA TEŞEBBUHA MÊRAN Û YA JINAN BI HEVDU

١٦٣٣- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: لَعَنَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ الْمُخَنَّثِينَ مِنَ الرِّجَالِ، وَالْمُتَرَجِّلَاتِ مِنَ النِّسَاءِ.

  

وَفِي رِوَايَةٍ: لَعَنَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ الْمُتَشَبِّهِينَ مِنَ الرِّجَالِ بِالنِّسَاءِ، وَالْمُتَشَبِّهَاتِ مِنَ النِّسَاءِ بِالرِّجَالِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1633- Ji kurê 'Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) lanet kiriye li wan mêrên mîna jinan û li wan jinên mîna mêran li xwe kirine."

Di senedekê de: "Pêxemberê Xwedê (s.) lanet kiriye li wan mêrên ku xwe dikin mîna jinan û li wan jinên ku xwe dikin mîna mêran." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٦٣٤ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: لَعَنَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ الرَّجُلَ يَلْبِسُ لِبْسَةَ الْمَرْأَةِ، وَالْمَرأَةَ تَلْبَسُ لِبْسَةَ الرَّجُلِ. رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1634-Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) lanet kiriye li wî mêrê ku kincê jinan li xwe dike û li wê jina ku kincê mêran li xwe dike." *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٦٣٥ - وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (صِنْفَانِ مِنْ أَهْلِ النَّارِ لَمْ أَرَهُمَا: قَوْمٌ مَعَهُمْ سِيَاطٌ كَأَذْنَابِ الْبَقَرِ يَضْرِبُونَ بِهَا النَّاسَ، وَنِسَاءٌ كَاسِيَاتٌ عَارِيَاتٌ، مُمِيلاَتٌ مَائِلاَتٌ، رُؤُوسُهُنَّ كَأَسْنِمَةِ الْبُخْتِ المَائِلَةِ لَا يَدْخُلْنَ الجَنَّةَ، وَلَا يَجِدْنَ رِيحَهَا، وَإِنَّ رِيحَهَا لَيُوجَدُ مِنْ مَسِيرَةِ كَذَا وَكَذَا). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1635- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Du zumrê ji ehlê êgir hene, hîna min ew di dunyayê de nedîtine: Qewmekî ku digel wan qemçûyê mîna boçka çêlekan hene ku bi wan li însanan didin û qismê duyem jî ew jinên bi kinc in lê tazî ne, jinên din jî teşwîqê vê yekê dikin û xwe bi qurretî dihejînin. Û serê wan jî wekî hawîda devehê ye. Ew naçine cennetê û bêhna wê jî bêhn nakin ku bêhna wê jî ji ev qas ev qas dûratî ve tê bêhnkirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهِي عَنِ التَّشَبُّهِ بِالشَّيْطَانِ وَالْكُفَّارِ

## NEHYA JI WEKBÛNIYA ŞEYTAN Û GAWIRAN

١٦٣٦ - عَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لا تَأْكُلُوا بِالشِّمَالِ، فَإِنَّ الشَّيطَانَ يَأْكُلُ وَيَشْرَبُ بِشِمالِهِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1636- Ji Cabir (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn bi destê çepê xwarinê nexwin, lewra şeytan bi çepê xwe dixwe û vedixwe.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٦٣٧- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا يَأْكُلَنَّ أَحَدُكُمْ بِشِمَالِهِ، وَلَا يَشْرَبَنَّ بِهَا، فَإِنَّ الشَّيْطَانَ يَأْكُلُ بِشِمَالِهِ وَيَشْرَبُ بِهَا). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1637- Ji Îbnu ‘Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Bila kes ji we bi çepê xwe ne bixwe û ne jî vexwe. Lewra şeytan bi çepê xwe dixwe û vedixwe.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٦٣٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّ الْيَهُودَ وَالنَّصَارَى لَا يَصْبِغُونَ، فَخَالِفُوهُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1638- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Bêguman Cihû û Fileh porê xwe boyax nakin, vêca hûn wekî wan nekin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ نَهْيِ الرَّجُلِ وَالْمَرْأَةِ عَنْ خِضَابِ شَعْرِهِمَا بِسَوَادٍ

## NEHYA MÊR Û JINÊ JI BOYAXKIRINA PORÊ XWE BI BOYAXA REŞ

١٦٣٩- عَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: أُتِيَ بِأَبِي قُحَافَةَ وَالِدِ أَبِي بَكْرٍ الصِّدِّيقِ ﷺ يَوْمَ فَتْحِ مَكَّةَ وَرَأْسُه وَلِحْيَتُهُ كَالثَّغَامَةِ بَيَاضاً، فَقَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (غَيِّرُوا هَذَا وَاجْتَنِبُوا السَّوَادَ) رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1639- Ji Cabir (r.), got: Ebû Quhafeyê bavê Ebû Bekirê Siddîq (r.) di roja fetha Mekkeyê de hate anîn ku ser û riha wî mîna gula berfînê spî bû. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Hûn van por û rihê spî bi boyaxê biguherînin, lê xwe ji boyaxa reş jî biparêzin.” *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهْيِ عَنِ الْقَزَعِ

## NEHYA JI KURRKIRINA HINEKÎ JI PORÊ SERÎ Û HÎŞTINA HINEKÎ

١٦٤٠- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: نَهَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنِ الْقَزَعِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1640- Ji Îbnu ‘Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) men‘a kurrkirina hinekî ji por û hiştina hinekî kiriye.” *Buxari û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٤١- وَعَنْهُ قَالَ: رَأَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ صبيّاً قَدْ حُلِقَ بَعْضُ شَعْرِ رَأْسِهِ وَتُرِكَ بَعْضُهُ، فَنَهَاهُمْ عَنْ ذَلِكَ وَقَالَ: (احْلِقُوهُ كُلَّهُ، أَوِ اتْرُكُوهُ كُلَّهُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ عَلَى شَرْطِ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٍ.

1641- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) zarokek dît ku hinek porê serê wî hatibû kurrkirin û hinek jî hatibû hiştin, Pêxemberê Xwedê (s.) nehya wan ji vê kirinê kir û got: “Hûn yan bi temamî kurr bikin yan jî bi temamî bihêlin.” *Ebû Dawûd li ser şertê Buxarî û Muslim bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٦٤٢- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ جَعْفَرَ ﷺ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ أَمْهَلَ آلَ جَعْفَرٍ ﷺ ثَلاثاً، ثُمَّ أَتَاهُمْ فَقَالَ: (لَا تَبْكُوا عَلَى أَخِي بَعْدَ الْيَوْمِ) ثُمَّ قَالَ: (ادْعُوا لِي بَنِي أَخِي) فَجِيءَ بِنَا كَأَنَّا أَفْرُخٌ فَقَالَ: (ادْعُوا لِيَ الْحَلَّاقَ) فَأَمَرَهُ، فَحَلَقَ رُؤُوسَنَا. رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ عَلَى شَرْطِ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٍ.

1642- Ji ‘Ebdullahê kurê Ce‘fer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) sê rojan mohlet de ‘ayîla Ce‘fer, paşê hate bal wan û got: “Hûn êdî piştî îro li ser birayê min negrîn.” Paşê jî got: “Hûn gazî kurên birayê min bikin, bila werine bal min.” (‘Ebdullah dibêje) em anîne hizûra Pêxemberê Xwedê (s.) ku em mîna ferxikan bûn (ji xem û keserê). Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Hûn gazî berberekî bikin.” Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) emrê berber kir û wî jî serê me kurr kir. *Ebû Dawûd li ser şertê Buxarî û Muslim bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٦٤٣- وَعَنْ عَلِيٍّ ﷺ قَالَ: نَهَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ أَنْ تَحْلِقَ الْمَرْأَةُ رَأْسَهَا. رَوَاهُ النَّسَائِي.

1643- Ji ‘Elî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) nehî kiriye ji kurrkirina jina porê serê xwe. *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَحْرِيمِ وَصْلِ الشَّعْرِ وَالْوَشْمِ

## HERAMBÛNA PORHEVEKIRINÊ, DEQKIRINÊ Û FIRKKIRINA DIRANA

Xwedayê te‘ala gotiye:

﴿إِنْ يَدْعُونَ مِنْ دُونِهِ إِلَّا إِنَاثاً وَإِنْ يَدْعُونَ إِلَّا شَيْطَاناً مَرِيداً ۝ لَعَنَهُ الله وَقَالَ لأَتَّخِذَنَّ مِنْ عِبَادِكَ نَصِيباً مَفْرُوضاً ۝ وَلأُضِلَّنَّهُمْ وَلأُمَنِّيَنَّهُمْ وَلآمُرَنَّهُمْ فَلَيُبَتِّكُنَّ آذَانَ الأَنْعَامِ وَلآمُرَنَّهُمْ فَلَيُغَيِّرُنَّ خَلْقَ الله﴾

*“(ew muşrik) ji xeynê Xwedî gazî û perestina hinek perestiyê mê dikin (wekî Lat, ‘Uzza û Menat...), bi tenê şeytanê xiryayî diparêzin û hewar dikinê. Xwedê dûrxist ji dilovaniya xwe (lanet lê barand). Sond xwar û got: Ez dê pareke eşkere ji bendeyê te ji bo xwe bixim. Ez dê wan ji rêya rast berze bikim û dê wan bêhêvî bikim, ez dê fermana wan bikim, vêca ew guhê terşan jêvekin (ku bêne nîşan kirin ku ew pêşkêş in ji bo perestiyê), ez dê fermana wan bikim ku ew aferînên Xwedê biguherînin.”*[1]

١٦٤٤- وَعَنْ أَسْمَاءَ ﵂ أَنَّ إِمْرَأَةً سَأَلَتِ النَّبِيَّ ﷺ فَقَالَتْ: يَا رَسُولَ الله إِنَّ إِبْنَتِي أَصَابَتْهَا الْحَصْبَةُ، فَتَمَرقَ شَعْرُهَا، وَإِنِّي زَوَّجْتُهَا، أَفَأَصِلُ فِيهِ؟ فَقَالَ: (لَعَنَ الله الْوَاصِلَةَ وَالْمَوْصُولَةَ) وَفِي رِوَايَةٍ: (الْوَاصِلَةَ وَالْمُسْتَوْصِلَةَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ حَدِيث نَحْوهُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1644- Ji Esma ya keça Ebû Bekirê Siddîq (r.) hatiye rîwayetkirin ku jinekê ji Pêxember (s.) pirs kir û got: Ya Pêxemberê Xwedê! Keça min bi sorika ket û vêca porê wê weşiya. Min jî ew da mêr. Gelo, ez hinek por pê ve bikim? Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: “Laneta Xwedê li ser wê jinikê be ku por bi porê xelkê ve girêdide û lanet hem li ser wê jinikê be ku por bi porê wê ve tê girêdan.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di senedekê de: “Laneta Xwedê li ser wê jinikê be ku por bi porê xelkê ve girêdide û lanet hem li ser wê jinikê be ku daxwaza evê çendê dike.”

Ji Hz. ‘Aîşe (r.) hedîseke mîna vê hedîsê hatiye rîwayetkirin. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٤٥- وَعَنْ حُمَيْدِ بْنِ عَبْدِ الرَّحْمنِ، أَنَّهُ سَمِعَ مُعَاوِيَةَ ﵁ عَامَ حَجَّ عَلَى المِنْبَرِ وَتَنَاوَلَ قُصَّةً مِنْ شَعْرٍ كَانَتْ فِي يَدِ حَرسِي فَقَالَ: يَا أَهْلَ المَدِينَةِ، أَيْنَ عُلَمَاؤُكُمْ؟ سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَنْهَى عَنْ مِثْلِ هذِهِ، وَيَقُولُ: (إِنَّمَا هَلَكَتْ بَنُو إِسْرَائِيلَ حِينَ إِتَّخَذَ هَذِهِ نِسَاؤهُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1645- Ji Humeydê kurê ‘Ebdurrehman (r.) hatiye rîwayetkirin ku wî ji Hz. Mu‘awiye (r.) bihîst, di sala ku ew (r.) li hecê bû û wî (r.) çînikek por di destê notirvanekî de dît û ew hilda û vêca derkete mînberê, wiha got: Gelî xelkê Medînê! Kanî ‘alimê we, ew li kuderê ne? Min ji Pêxember (s.) bihîst ku kirina mîna evê kirinê nehî dikir û digot: “Bêguman Benî Îsraîl,

1 Nîsa, 4/117-119.

wextê jinên wan ev yeka (yanî, por bi porê xwe ve danîn) kirin ‘adet, helak bûn.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٤٦- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ لَعَنَ الْوَاصِلَةَ وَالْمُسْتَوْصِلَةَ، وَالْوَاشِمَةَ وَالْمُسْتَوشِمَةَ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1646- Ji Îbnu ‘Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) lanet kiriye li wê jinika ku por bi porê xelkê ve girêdide û li wê jinika ku daxwaza evê çendê dike. Û lanet kiriye li wê jinika ku çermê yekê deq dike û hem lanet kiriye li wê jinika ku dixwaze ku çermê xwe bide deqkirin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٤٧- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: لَعَنَ الله الْوَاشِمَات وَالْمُسْتَوْشِمَات وَالْمُتَنَمِّصَات، وَالْمُتَفَلِّجَاتِ لِلْحُسْنِ، الْمُغَيِّرَاتِ خَلْقَ الله فَقَالَتْ لَهُ إِمْرَأَةٌ فِي ذَلِكَ، فَقَالَ: وَمَالِي لَا أَلْعَنُ مَنْ لَعَنَ رَسُولُ الله ﷺ وَهُوَ فِي كِتَابِ اللَّهِ قَالَ اللَّهُ تَعَالَى: (وَمَا آتَاكُمُ الرَّسُولُ فَخُذُوهُ وَمَا نَهَاكُمْ عَنْهُ فَانْتَهُوا-الْحَشْر٧) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1647- Ji kurê Mes‘ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Xwedê lanet bike li wan jinên ku karê deqkirinê dikin û li wan jinên ku dixwazin çermê xwe bidin deqkirin. Û laneta Xwedê li wan jinên ku pûrta ser çavê xwe dirûçikînin, li wan jinên ku ji bo rindayê diranê xwe firk dikin û li wan jinên ku çêkirina Xwedê diguherînin be. Wextê jinekê di vê derbarê de lome li Îbn Mes‘ûd kir, Îbn Mes‘ûd (r.) got: Çi dibe li min ku ez lanetê nekim li wî kesê ku Pêxemberê Xwedê (s.) lanet lê kiriye? Di halê ku di kitêba Xwedê de, Xwedê wiha emr dike: “Pêxember emrê we bi çi kir bikin û nehya we jî ji çi kir, xwe jê biparêzin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ النَّهي عَنْ نتْف الشَّيْب

## NEHYA JI RAKIRINA MÛYÊ SPÎ JI RÎH Û JI SERÎ

١٦٤٨- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ، عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَا تَنْتِفُوا الشَّيبَ، فَإِنَّهُ نُورُ الْمُسْلِمِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرْمِذِي وَالنَّسَائِي بِأَسَانِيد حَسَنَة، وَقَالَ التِّرْمِذِي: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1648- Ji 'Emrê kurê Şu'eyb, ji bavê wî, ji kalkê wî (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Hûn mûyê spî hilnekin, lewra ew roja qiyametê nûra misilman e." *Hedîs hesen e. Ebû Dawûd, Tirmizî û Nesaî bi senedên hesen rîwayet kirine.*

١٦٤٩- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَن عَمِلَ عَمَلاً لَيْسَ عَلَيْهِ أَمْرُنَا فَهُوَ رَدٌّ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1649-Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Her kesê 'emelekî bike li ser wî 'emelî emrê me tunebe ew merdûd e/nayê qebûlkirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ كَرَاهَةِ الإِسْتِنْجَاءِ بِالْيَمِين

## MEKRÛHBÛNA ÎSTINCAYÊ BI DESTÊ RASTÊ

١٦٥٠- عَنْ أَبِي قَتَادَةَ ﵁ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِذَا بَالَ أَحَدُكُمْ، فَلَا يَأْخذنَّ ذَكَرهُ بِيَمِينِهِ، وَلَا يَسْتَنْجِ بِيَمِينِهِ، وَلَا يَتَنَفَّسْ فِي الإِنَاءِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1650- Ji Ebû Qetade (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Wextê yekî ji we mîz kir bila 'ewretê xwe bi destê xwe yê rastê negre û bila bi destê rastê îstinca jî neke. Û wextê av vexwar bila bêhna xwe bernede piyalê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ كَرَاهَةِ الْمَشْيِ فِي نَعْلٍ وَاحِدَةٍ أَوْ خُفٍّ وَاحِد

## MEKRÛHBÛNA MEŞÎNA BI YEK SOLEKÊ YAN JÎ BI YEK XUFEKÊ

١٦٥١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﵁ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا يَمْشِ أَحَدُكُمْ فِي نَعْلٍ وَاحِدَةٍ، لِيَنْعَلْهُمَا جَمِيعاً، أَوْ لِيَخْلَعْهُمَا جَمِيعاً). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1651- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bila tu kes ji we bi yek solekê ve bi rê ve neçe; yan bila her dukan wergire yan jî bila her dukan derxe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٥٢- وَعَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِذَا انْقَطَعَ شِسْعُ نَعْلِ أَحَدِكُمْ، فَلَا

  

يَمْشِ فِي الأُخْرَى حَتَّى يُصْلِحَهَا). رَوَاهُ مُسْلِم.

1652- Dîsa ji wî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Wextê binê sola yekî ji we qetiya bila ew bi sola xwe ya din bi rê ve neçe, heta kita din çêkir." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٦٥٣- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ نَهَى أَنْ يَنْتَعِلَ الرَّجُلُ قَائِماً. رَوَاهُ أَبو دَاوودَ بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

1653- Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) nehî kiriye ji sol-lipêxistina jipiyan. *Ebû Dawûd bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهِي عَنْ تَرْكِ النَّارِ فِي الْبَيْتِ عِنْدَ النَّوْمِ

## NEHYA JI VÊXISTÎ-HÎŞTINA AGIRÊ DI MALÊ DE WEXTÊ RAZANÊ

١٦٥٤- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَا تَتْرُكُوا النَّارَ فِي بُيُوتِكُمْ حِينَ تَنَامُونَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1654- Ji Îbnu 'Umer (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Hûn di malên xwe de wextê hûn radizên agir vêxistî nehêlin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٥٥- وَعَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: اِحْتَرَقَ بَيْتٌ بِالْمَدِينَةِ عَلَى أَهْلِهِ مِنَ اللَّيْلِ، فَلَمَّا حُدِّثَ رَسُولُ الله ﷺ بِشَأْنِهِمْ قَالَ: (إِنَّ هَذِهِ النَّارَ عَدُوٌّ لَكُمْ، فَإِذَا نِمْتُمْ، فَأَطْفِئُوهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1655- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.), got: Di Medînê de bi şev malek şewitî ku ehlê wê jî tê de bûn. Wextê rewşa wan ji Pêxemberê Xwedê (s.) re hate gotin, ewî (s.) got: "Bêguman ev agirê hanê dijminê we ye, vêca wextê hûn razan ewî bitemirînin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٥٦- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (غَطُّوا الإِنَاءَ، وَأَوْكِئُوا السِّقَاءَ، وَأَغْلِقُوا الأَبْوَابَ، وَأَطْفِئُوا السِّرَاجَ، فَإِنَّ الشَّيْطَانَ لَا يَحِلُّ سِقَاءً، وَلَا يَفْتَحُ بَاباً، وَلَا يَكْشِفُ إِنَاءً، فَإِنْ لَمْ يَجِدْ أَحَدُكُمْ إِلَّا أَنْ يَعْرُضَ عَلَى إِنَائِهِ عُوداً، وَيَذْكُرِ اسْمَ الله، فَلْيَفْعَلْ، فَإِنَّ الْفُوَيْسِقَةَ تَضْرِمُ عَلَى أَهْلِ الْبَيْتِ بَيْتَهُمْ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1656- Ji Cabir (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn firaxa binixumînin, devê hebanan girêdin, deriyan kilît kin û çiran jî bitemirînin. Lewra şeytan nikare hebanê û derî veke û firaxê jî veke. Heger yek ji we ji xeyn qetek dar peyda nekir ku deyne ser devê firaxê, bila ewî darî deyne ser firaxê û bila navê Xwedê jî bêje. Lewra mişk dikare malê bi maliyan ve bişewitîne." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهيِ عَنِ التَّكَلُّف

## NEHYA JI MEŞEQET Û ZORAYIYÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿قُلْ مَا أَسْأَلُكُمْ عَلَيْهِ مِنْ أَجْرٍ وَمَا أَنَا مِنَ الْمُتَكَلِّفِينَ﴾

"(Ey Pêxember) bêje: (Li beranberî Pêxemberiya xwe) ez tu ucretî ji we naxwazim û ez ne ji wan im yên ku meşeqet û zoriyê derdixin."[1]

١٦٥٧- وَعَنْ عُمَرَ ﷺ قَالَ: نُهِينَا عَنِ التَّكَلُّفِ. رَوَاهُ البُخَارِي.

1657- Ji 'Umer (r.), got: Em hatine nehî kirin ji meşeqetdayin û zoriyê. *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٦٥٨- وَعَنْ مَسْرُوقٍ قَالَ: دَخَلْنَا عَلَى عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ ﷺ فَقَالَ: يَا أَيُّهَا النَّاسُ مَنْ عَلِمَ شَيْئاً فَلْيَقُلْ بِهِ، وَمَنْ لَمْ يَعْلَمْ، فَلْيَقُلْ: الله أَعْلَمُ، فَإِنَّ مِنَ الْعِلْمِ أَنْ تَقُولَ لِمَا لَا تَعْلَمُ: الله أَعْلَمُ، قَالَ الله تَعَالَى لِنَبِيِّهِ ﷺ: (قُلْ مَا أَسْأَلُكُمْ عَلَيْهِ مِنْ أَجْرٍ وَمَا أَنَا مِنَ الْمُتَكَلِّفِينَ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1658- Ji Mesrûq (r.), got: Em çûne cem 'Ebdullahê kurê Mes'ûd (r.), vêca ewî got: Gelî mirovan, çi kesê tiştekî bizanibe bila ewî bibêje û kesê tiştekî jî nizanibe bila bibêje: Xwedê çêtir dizane. Lewra ji zanînê ye ku mirov ji bo tiştê ku nizanibe bibêje: Xwedê çêtir dizane. Xwedê te'ala ji Pêxemberê xwe re gotiye: "(Ey Pêxember) bibêje: (Li beranberî Pêxemberiya xwe) ez tu ucretî ji we naxwazim û ez ne ji wan im yên ku meşeqet û zoriyê derdixin."

1 Sad, 38/86.

## بَابُ تَحْرِيمِ النِّيَاحَةِ عَلَى الْمَيِّتِ وَلَطْمِ الْخُدُودِ وَشَقِّ الْجَيْبِ وَنَتْفِ الشَّعْرِ وَالدُّعَاءِ بِالْوَيْلِ وَالثُّبُورِ

## HERAMBÛNA QÊRÎN Û QAJÎNA LI SER MIRÎ, LÊXISTINA RÛ, QELIŞANDINA KINCAN, RÛÇIKANDINA POR Û NIFIRÊN BI WEYL Û HELAKÊ

١٦٥٩- عَنْ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: الْمَيِّتُ يُعَذَّبُ فِي قَبْرِهِ بِمَا نِيحَ عَلَيْهِ.

وَفِي رِوَايَةٍ: (مَا نِيحَ عَلَيْهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1659- Ji 'Umerê kurê Xettab (r.), got: Pêxember (s.) gotiye: "Mirî bi sedem qêrîn û qajîna li ser, di gora xwe de tê 'ezabdan."

Di senedeke dî de: Heta ku li ser tê qîrîn. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٦٠- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَيْسَ مِنَّا مَنْ ضَرَبَ الخُدُودَ، وَشَقَّ الْجُيُوبَ، وَدَعَا بِدَعْوَى الْجَاهِلِيَّةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1660- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê ku li lama xwe bixe, pêsîrên xwe biqelişîne û bi lorandina dewra cahiliyetê bilorîne ew ne ji me ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٦١- وَعَنْ أَبِي بُرْدَةَ قَالَ: وَجِعَ أَبُو مُوسَى، فَغُشِيَ عَلَيْهِ، وَرَأْسُهُ فِي حِجْرِ إِمْرَأَةٍ مِنْ أَهْلِهِ، فَأَقْبَلَتْ تَصِيحُ بِرَنَّةٍ، فَلَمْ يَسْتَطِعْ أَنْ يَرُدَّ عَلَيْهَا شَيْئاً، فَلَمَّا أَفَاقَ، قَالَ: أَنَا بَرِيءٌ مِمَّنْ بَرِئَ مِنْهُ رَسُولُ الله ﷺ إِنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ بَرِيءٌ مِنَ الصَّالِقَةِ، وَالْحَالِقَةِ، وَالشَّاقَةِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1661- Ji Ebû Burde (r.), got: Ebû Mûsa nexweş bû, bêhiş ketibû û serê wî di hemêza jineke ji ehlê mala wî de bû. Ewê jinikê dest pê kir bi denegekî bilind lorand û Ebû Mûsa jî nikaribû ewê men' bike. Vêca wextê ew (r.) bi xwe ve hat got: Ez dûr im ji wî tiştê ku Pêxemberê Xwedê (s.) jê dûr e. Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) xwe dûr digirt ji wê jina ku bi dengê bilind dilorîne û ji wê jina ku porê xwe dirûçikîne û ji wê jina ku kincên xwe diqelişîne. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٦٢- وَعَنِ الْمُغِيرَةِ بْنِ شُعْبَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ نِيحَ عَلَيْهِ، فَإِنَّهُ يُعَذَّبُ بِمَا نِيحَ عَلَيْهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1662- Ji Muxîreyê kurê Şu‘be (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Kesê ku li ser bê qîrandin û qîjandin, ew mirov bi sedem wê qîrîn û qajînê roja qiyametê wê bê ‘ezabdan.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٦٣- وَعَنْ أُمِّ عَطِيَّةَ نُسَيْبَةَ ﷺ قَالَتْ: أَخَذَ عَلَيْنَا رَسُولُ الله ﷺ عِنْدَ الْبَيْعَةِ أَنْ لَا نَنُوحَ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1663- Ji Ummu Etiyye Nuseybe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) li nik bey‘etê ji me soza ku em qîrîn û qajînê nekin jî stend. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٦٤- وَعَنِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ ﷺ قَالَ: أُغْمِيَ عَلَى عَبْدِ اللَّهِ بْنِ رَوَاحَةَ ﷺ فَجَعَلَتْ أُخْتُهُ تَبْكِي، وَتَقُولُ: وَاجَبَلاهُ، وَاكَذَا، وَاكَذَا: تُعَدِّدُ عَلَيْهِ، فَقَالَ حِينَ أَفَاقَ: مَا قُلْتِ شَيْئاً إِلَّا قِيلَ لِي: أَنْتَ كَذَلِكَ! رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1664- Ji Nu‘manê kurê Beşîr (r.), got: ‘Ebdullahê kurê Rewahe (r.) bê hiş ket û xuşka wî dest bi girî kir û got: Wey çiyayo, wey wihayo, wey wihayo û hêjahiyên wî jimart. Îcar wextê ‘Ebdullah bi xwe ve hat got: Bêguman te ji min re çi gotibe ji min re hate gotin tu wisa yî? *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٦٦٥- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: اِشْتَكَى سَعْدُ بْنُ عُبَادَةَ ﷺ شَكْوَى، فَأَتَاهُ رَسُولُ الله ﷺ يَعُودُهُ مَعَ عَبْدِ الرَّحْمنِ بْنِ عَوْفٍ، وَسَعْدِ بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ وَعَبْدِ الله بْنِ مَسْعُودٍ ﷺ، فَلَمَا دَخَلَ عَلَيْهِ، وَجَدَهُ فِي غَشْيَةٍ فَقَالَ: (أَقضى؟) قَالُوا: لَا يَا رَسُولَ الله، فَبَكَى رَسُولُ الله ﷺ فَلَما رَأَى الْقَوْمُ بُكَاءَ النَّبِيِّ ﷺ بكَوْا، قَالَ: (أَلَا تَسْمَعُونَ؟ إِنَّ الله لَا يُعَذِّبُ بِدَمْعِ الْعَيْنِ، وَلَا بِحُزْنِ الْقَلْبِ، ولَكِنْ يُعَذِّبُ بِهَذَا) وَأَشَارَ إِلَى لِسَانِه أَوْ (يَرْحَمُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1665- Ji Îbnu ‘Umer (r.), got: Se‘dê kurê ‘Ubade ji nexweşiyê gazind dikir. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) digel ‘Ebdurrehmanê kurê ‘Ewf, Se‘dê kurê Ebû Weqqas û ‘Ebdullahê kurê Mes‘ûd (r.) ve hate serlêdana Se‘dê kurê ‘Ubade (r.). Îcar wextê Pêxemberê Xwedê (s.) çû cem, dît ku ew

bêhiş ketiye, got: "Qey, ew mir?" Gotin: Naxêr, ya Pêxemberê Xwedê. (Ji xem û keserê) Pêxemberê Xwedê (s.) giriya, cema'etê jî wextê dît ku Pêxemberê Xwedê (s.) digrî ew jî giriyan. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Qey we nebihîstiye? Bêguman Xweda te'ala ne bi hêstirên çavan û ne jî bi xem û keseran qelb ezab dide. Lê bi evî, îşaretê bal zimanê xwe ve kir, yan ezab dide yan jî rehmê dike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٦٦- وَعَنْ أَبِي مَالِكٍ الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (النَّائِحَةُ إِذَا لَمْ تَتُبْ قَبْلَ مَوْتِهَا تُقَامُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ وَعَلَيْهَا سِرْبَالٌ مِنْ قَطِرَانٍ، وَدِرْعٌ مِنْ جَرَبٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1666- Ji Ebû Malikê Eş'erî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Jina bi dengê bilind dilorîne wextê beriya mirina xwe tobe neke, roja qiyametê tê rawestandin ku li ser wê kirasek ji qîr û qetranê û zirxek jî ji gurrîbûnê (yan jî zirxek zingargirtî) heye tê heşirkirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٦٦٧- وَعَنْ أَسِيدِ بْنِ أَبِي أَسِيدٍ التَّابِعِيِّ عَنِ إِمْرَأَةٍ مِنَ الْمُبَايِعَاتِ قَالَتْ: كَانَ فِيمَا أَخَذَ عَلَيْنَا رَسُولُ الله ﷺ فِي الْمَعْرُوفِ الَّذِي أَخَذَ عَلَيْنَا أَنْ لَا نَعْصِيَهُ فِيهِ: أَنْ لَا نَخْمِشَ وَجْهاً، وَلَا نَدْعُوَ وَيْلاً، وَلَا نَشُقَّ جَيْباً، وَأَنْ لَا نَنْثُرَ شَعْراً. رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

1667- Ji Useydê kurê Ebû Useydê tabi'î, ji jineke ku bi Pêxemberê Xwedê (s.) re bey'etkirî rîwayet kiriye ku wê gotiye: Di wê bey'ata ku Pêxemberê Xwedê (s.) di derbarê Îslamê de ji me stand; soz û 'ehd ji me stand ku em bêemriya wî nekin, em li ser mirî rûyê xwe neçirînin, nifirên helakê nekin, pêsîrê xwe neqelişînin û porê xwe nerûçikînin. *Ebû Dawûd bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

١٦٦٨- وَعَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَا مِنْ مَيِّتٍ يَمُوتُ، فَيَقُومُ بَاكِيهِمْ، فَيَقُولُ: وَاجَبَلَاهُ، وَاسَيِّدَاهُ، أَوَ نَحْوَ ذَلِكَ إِلَّا وُكِّلَ بِهِ مَلَكَانِ يَلْهَزَانِهِ: أَهَكَذَا كُنْتَ؟). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1668- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Çi kesê bimre û yê ku li ser digrî bêje: 'Wey çiyayo, wey mezino, wey axayo...' miheqeq du milyaket têne erkdarkirin, îcar ew her du milyaket tinazên xwe bi ewî mirî dikin û dibêjin: Bi rastî jî tu wisa bûyî?" *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

  

١٦٦٩- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (اِثْنَتَانِ فِي النَّاسِ هُمَا بِهِمْ كُفْرٌ: الطَّعْنُ فِي النَّسَبِ، وَالنِّيَاحَةُ عَلَى المَيِّتِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1669- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Du xûy û xeslet di nav însanan de hene, ew her du kufr in. (Yanî, ji kar û 'emelê gawiran e): Reşkirina/lekedarkirina nesebê û qêrîn û lorandina li ser mirî bi dengê bilind." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهي عَنْ إِتْيَان الْكُهَّان وَالْمُنَجِّمِين

## NEHYA JI ÇÛYINA CEM KAHIN Û STÊRNASAN

١٦٧٠- عَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: سَأَلَ رَسُولَ الله ﷺ أَنَاسٌ عَنِ الْكُهَّانِ؟ فَقَالَ: (لَيْسُوا بِشَيءٍ) فَقَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنَّهُمْ يُحَدِّثُونَا أَحْيَاناً بِشَيءٍ، فَيَكُونُ حَقّاً؟ فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (تِلْكَ الْكَلِمَةُ مِنَ الْحَقِّ يَخْطَفُهَا الْجِنِّيُّ، فَيَقُرُّهَا فِي أُذُنِ وَلِيِّهِ، فَيَخْلِطُونَ مَعَهَا مائَةَ كَذْبَةٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ لِلبُخَارِيِّ عَنْ عَائِشَةَ ﷺ أَنها سَمِعَتْ رسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ الْمَلَائِكَةَ تَنْزِلُ فِي العَنَانِ فَتَذْكُرُ الأَمْرَ قُضِيَ فِي السَّمَاءِ، فَيَسْتَرِقُ الشَّيْطَانُ السَّمْعَ، فَيَسْمَعُهُ، فَيُوحِيهِ إِلَى الْكُهَّانِ، فَيَكْذِبُونَ مَعَهَا مائَةَ كَذْبَةٍ مِنْ عِنْدِ أَنْفُسِهِمْ).

1670- Ji 'Aîşe (r.), got: Hinek însanan ji Pêxemberê Xwedê (s.) pirsa kahînan kirin? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ew tu tiştek nînin." Vêca sehabiyan gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Ew carinan tiştekî dibêjin û gotina wan jî rast derdikeve. Pêxemberê Xwedê (s.) got: Ew, peyveke ji heqê ye, ciniyek ewê peyvê radihêle û di guhê dostekî xwe de dixwîne. Û vêca ew mirov jî sed derewî tevlî wê peyvê dike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di senedeke Buxarî de: Ji Hz. 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewê ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye ku wiha digot: "Bêguman milyaket berjêrî ewran dibin û hinek bûyerên ku yên di dahatûyê de dê bibin, ku di asîmanan de hatine emirkirin, di navbera xwe de muzakere dikin. Vêca şeytan ji wan tiştekî radihêle û wî digîhîne kahînan. Û kahîn jî sed derewî li bal xwe li

ser zêde dikin û dibêjin."

١٦٧١ - وَعَنْ صَفِيَّةَ بِنْتِ أَبِي عُبَيْدٍ، عَنْ بَعْضِ أَزْوَاجِ النَّبِيِّ ﷺ وَرَضِيَ اللَّه عَنْهَا، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَنْ أَتَى عَرَّافاً فَسَأَلَهُ عَنْ شَيْءٍ فَصَدَّقَهُ، لَمْ تُقْبَلْ لَهُ صَلاَةٌ أَرْبَعِينَ يَوْماً). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1671- Ji Safiyya keça Ebû 'Ubeyd (r.), ji hinek pîrekên Pêxember (s.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Kî here cem kahînekî, tiştekî jê pirs bike û gotina wî tesdîq bike nimêja wî çil rojî nayê qebûlkirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٦٧٢ - وَعَنْ قَبِيصَةَ بْنِ الْمُخَارِقِ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (الْعِيَافَةُ، وَالطِّيَرَةُ، وَالطَّرْقُ، مِنَ الْجِبْتِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

1672- Ji Qebîseyê kurê Muxariq (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Firandina çivîkan, xêzkirina xîzê û falvekirina bi kevirê piçûk, ji kehanetê ye." *Ebû Dawûd bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

١٦٧٣ - وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنِ اقْتَبَسَ عِلْماً مِنَ النُّجُومِ، اقْتَبَسَ شُعْبَةً مِنَ السِّحْرِ زَادَ مَا زَادَ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1673- Ji kurê 'Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî ji stêrkan zanînekî bi dest bixe, miheqeq ewî ji sihrê parek hilda ye. Çiqas zêde bike gunehê wî jî zêde dibe." *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٦٧٤ - وَعَنْ مُعَاوِيَةَ بْنِ الْحَكَمِ ﷺ قَالَ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ الله إِنِّي حَدِيثُ عَهْدٍ بِجَاهِلِيَّةٍ، وَقَدْ جَاءَ الله تَعَالَى بِالإِسْلَامِ، وَإِنَّ مِنَّا رِجَالاً يَأْتُونَ الْكُهَّانَ؟ قَالَ: (فَلَا تَأْتِهِمْ) قُلْتُ: وَمِنَّا رِجَالٌ يَتَطَيَّرُونَ؟ قَالَ: (ذَلِكَ شَيْءٌ يَجِدُونَهُ فِي صُدُورِهِمْ، فَلا يَصُدُّهُمْ) قُلْتُ: وَمِنَّا رِجَالٌ يَخُطُّونَ؟ قَالَ: (كَانَ نَبِيٌّ مِنَ الأَنْبِيَاءِ يَخُطُّ، فَمَنْ وَافَقَ خَطَّهُ، فَذَاكَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1674- Ji Mu'awiyeyê kurê Hekem (r.), got: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Ez nêzîkî dewra cahiliyetê me, Xwedê te'ala dînê Îslamê şand, lê hê jî ji me hinek mirov diçine bal falavêjan. (Tu çi dibêjî)? Ewî (s.) got: "Tu neçe bal wan." Min got: Hinek mirov ji me bêoxurî dikin. (Tu çi dibêjî)? Ewî (s.) got: "Ew hîsek e di dilê xwe de wê dibînin, bila ew wana ji kar û

kiryaran dûr neke. Min got: Ji me hinek mirov li ser xîzê xêz dike. (Tu çi dibêjî)? Wî (s.) got: "Pêxemberekî jî xêz dikişand, vêca kesê mîna wî xêz bikşîne (ewî îsabet kiriye)." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٦٧٥- وَعَنْ أَبِي مَسْعُودٍ الْبَدْرِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ نَهَى عَنْ ثَمَنِ الْكَلْبِ، وَمَهْرِ الْبَغِيِّ، وحُلْوَانِ الْكَاهِنِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1675- Ji Ebû Mes'ûdê Bedrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) nehî kiriye ji bihayê seyî, ji mehra zinakerê û ji bexşîşa kahînî. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ النَّهيِ عَنِ التَّطَيُّرِ

## NEHYA JI BÊOXURIYÊ

١٦٧٦- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَا عَدْوَى وَلَا طِيَرَةَ وَيُعْجِبُنِي الْفَأْلُ) قَالُوا: وَمَا الْفَأْلُ؟ قَالَ: (كَلِمَةٌ طَيِّبَةٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1676- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "(Nexweşiya) têbûnê û bêoxurî tune ye. Lê fe'l li xweşa min diçe." Sehabiyan gotin: Fe'l çi ye? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Peyva xweş e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٧٦- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا عَدْوَى وَلَا طِيَرَةَ، وَإِنْ كَانَ الشُّؤْمُ فِي شَيْءٍ فَفِي الدَّارِ وَالْمَرأَةِ وَالْفَرَسِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1677- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "(Nexweşiya) têbûnê û bêoxurî tuneye. Eger di tiştekî de bêoxurî hebûya, dê di xanî, jinikê û hespê de hebûya." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٧٨- وَعَنْ بُرَيْدَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ لا يَتَطَيَّرُ. رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1678- Ji Bureyde (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) di tu tiştî de bêoxurî nedikir. *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

١٦٧٩- وَعَنْ عُرْوَةَ بْنِ عَامِرٍ ﷺ قَالَ: ذُكِرَتِ الطِّيَرَةُ عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: (أَحْسَنُهَا

  

الْفَأْلُ، وَلا تَرُدُّ مُسْلِماً، فَإِذَا رَأَى أَحَدُكُمْ مَا يَكْرَهُ، فَلْيَقُلْ: اللَّهُمَّ لَا يَأْتِي بِالْحَسَنَاتِ إِلَّا أَنْتَ، وَلَا يَدْفَعُ السَّيِّئَاتِ إِلَّا أَنْتَ، وَلَا حَوْلَ وَلَا قُوَّةَ إِلَّا بِكَ). حَدِيثٌ صَحِيحٌ رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1679- Ji 'Urweyê kurê 'Amir (r.), gotiye: Li bal Pêxemberê Xwedê (s.) behsa bêoxuriyê hate kirin. Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Baştirê wê fe'l e. Bila bêoxurî, tu misilmanî ji karê wî nezîvirîne. Wextê yekî ji we tiştekî ku li xweşa wî neçe dît, bila bibêje: Xwedayo! Yê ku başiyê dide her tu yî û yê ku xirabiyê dûr dixe her tu yî. Hêz û quwet her bi te ye."

*Hedîs sehîh e. Ebû Dawûd bi senedeke riwayet kiriye.*

## بَابُ تَحْرِيمِ تَصْوِيرِ الْحَيَوَانِ

## HERAMBÛNA ÇÊKIRINA RESMÊ HEYWANAN

١٦٨٠ - عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّ الَّذِينَ يَصْنَعُونَ هَذِهِ الصُّوَرَ يُعَذَّبُونَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، يُقَالُ لَهُمْ: أَحْيُوا مَا خَلَقْتُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1680- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ew kesê van şeklan çêke wê roja qiyametê bê 'ezabdan û wê ji wan re bê gotin: Hûn tiştê ku we afirandiye vejînin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٨١ - وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: قَدِمَ رَسُولُ الله ﷺ مِنْ سَفَرٍ وَقَدْ سَتَرتُ سَهْوَةً لِي بِقِرَامٍ فِيهِ تَمَاثِيلُ فَلَمَّا رَآهُ رَسُولُ الله ﷺ تَلَوَّنَ وَجْهُهُ، وَقَالَ: (يَا عَائِشَةَ، أَشَدُّ النَّاسِ عَذَاباً عِنْدَ اللَّهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ الَّذِينَ يُضَاهُونَ بِخَلْقِ اللَّهِ قَالَتْ: فَقَطَعْنَاهُ، فَجَعَلْنَا مِنْهُ وِسَادَةً أَوْ وِسَادَتَيْنِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1681- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji seferekê zivirîbû, min jî pêşiya malê bi perdeyek ku tê de resim heyî nixumandibû. Wextê Pêxemberê Xwedê (s.) ew perde dît rengê wî çû û got: "'Aîşe, kesê roja qiyametê li cem Xwedê te'ala 'ezabê wî şedîdtir ewê ku di babeta afirandinê de xwe dişibihîne Xwedê te'ala ye." Hz. 'Aîşe (r.) dibêje: Vêca me ew perde dirand û me ji wê balgehek yan jî du balgeh çêkir. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٨٢ - وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (كُلُّ مُصَوِّرٍ فِي النَّارِ

يُجْعَلُ لَهُ بِكُلِّ صُورَةٍ صَوَّرَهَا نَفْسٌ فَيُعَذِّبُهُ فِي جَهَنَّمَ) قَالَ ابْنُ عَبَّاسٍ: فَإِنْ كُنْتَ لَا بُدَّ فَاعِلاً، فَاصْنَعِ الشَّجَرَ وَمَا لَا رُوحَ فِيهِ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1682- Ji kurê ‘Ebbas (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Çiqas nîgarvan hene di êgir de ne, ji nîgarvan re bi her nîgareke ku çêkiriye canek tê afirandin û ew can wî nîgarvanî di cehennemê de ‘ezabdar dike.” kurê ‘Ebbas (r.) gotiye: Eger tu mecbûrî çêkirina nîgarê bî, tu darekê û tiştekî ku tê de ruh tuneye çêke. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٨٣ - وَعَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (مَنْ صَوَّرَ صُورَةً فِي الدُّنْيا، كُلِّفَ أَنْ يَنْفُخَ فِيهَا الرُّوحَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ وَلَيْسَ بِنَافِخٍ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1683- Dîsa ji wî (r.), hatiye rîwayetkirin wî got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye digot: “Kesê di dunyayê de nîgarekî nîgar ke, wê roja qiyametê bê teklîfkirin bi ruh berdana wê û lê ew jî tu car nikare ruh bidê.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٨٤ - وَعَنِ ابْنِ مَسْعُود ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (إِنَّ أَشَدَّ النَّاسِ عَذَاباً يَوْمَ الْقِيَامَةِ الْمُصَوِّرُونَ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1684- Ji kurê Mes‘ûd (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Bêguman roja qiyametê şedîdtirê însanan ji aliyê ‘ezabê ve nîgarvan in.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٨٥ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (قَالَ اللَّهُ تَعَالَى: وَمَنْ أَظْلَمُ مِمَّنْ ذَهَبَ يَخْلُقُ كَخَلْقِي فَلْيَخْلُقُوا ذَرَّةً أَوْ لِيَخْلُقُوا حَبَّةً، أَوْ لِيَخْلُقُوا شَعِيرَةً). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1685- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Xwedayê te‘ala gotiye: “Kî zalimtir û sîtemkartir e ji wî kesê ku mîna afirandina min diafirîne. Vêca wextê ew dikare bila zerreyekê yan hebbekê yan jî libek ceh biafirîne.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٨٦ - وَعَنْ أَبِي طَلْحَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (لَا تَدْخُلُ الْمَلَائِكَةُ بَيْتاً فِيهِ كَلْبٌ وَلَا صُورَةٌ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1686- Ji Ebû Telhe (r.) hatiye senedandin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Milyaket naçine wê mala ku tê de seh û nîgar hebin.” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٦٨٧- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: وَعَدَ رَسُولَ الله ﷺ جِبْرِيلُ أَنْ يَأْتِيَهُ، فَرَاثَ عَلَيْهِ حَتَّى اشْتَدَّ عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَخَرَجَ فَلَقِيَهُ جِبْرِيلُ فَشَكَا إِلَيْهِ، فَقَالَ: (إِنَّا لَا نَدْخُلُ بَيْتاً فِيه كَلْبٌ وَلَا صُورةٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1687- Ji Îbnu ‘Umer (r.), got: Soz dabû Pêxemberê Xwedê (s.) ku bê ziyareta wî. Îcar hatina Cibrîl dereng ket heta Pêxemberê Xwedê (s.) xemgîn bû. Vêca wextê Pêxemberê Xwedê (s.) derket rastî Cibrîl hat û gazind jê kir. Li ser vê yekê Cibrîl got: Bêguman em naçine wê mala ku tê de seh û nîgar hebin. *Buxarî riwayet kiriye.*

١٦٨٨- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: وَاعَدَ رَسُولَ الله ﷺ جِبْرِيلُ ﷺ فِي سَاعَةٍ أَنْ يَأْتِيَهُ، فَجَاءَتْ تِلْكَ السَّاعَةُ وَلَمْ يَأْتِهِ، قَالَتْ: وَكَانَ بِيَدِهِ عَصاً، فَطَرَحَهَا مِنْ يَدِهِ وَهُوَ يَقُولُ: (مَا يُخْلِفُ الله وَعْدَهُ وَلَا رُسُلُهُ) ثُمَّ الْتَفَتَ، فَإِذَا جِرْوُ كَلْبٍ تَحْتَ سَرِيرِهِ، فَقَالَ: (مَتَى دَخَلَ هَذَا الْكَلْبُ؟) فَقُلْتُ: وَالله مَا دَرَيْتُ بِهِ، فَأَمَرَ بِهِ فَأُخْرِجَ، فَجَاءَهُ جِبْرِيلُ ﷺ، فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (وَعَدْتَنِي، فَجَلَسْتُ لَكَ وَلَمْ تَأْتِنِي) فقَالَ: مَنَعَنِي الْكَلْبُ الَّذِي كَانَ فِي بَيْتِكَ، إِنَّا لَا نَدْخُلُ بَيْتاً فِيهِ كَلْبٌ وَلَا صُورَةٌ. رَوَاهُ مُسْلِمْ.

1688- Ji ‘Aîşe (r.), got: Cibrîl soz dabû Pêxemberê Xwedê (s.) ku di demekê de bê ziyareta wî. Vêca ew dem hat lê Cibrîl nehat. Hz. ‘Aîşe (r.) dibêje: Di destê Pêxemberê Xwedê (s.) de gopalek hebû, ew ji destê xwe avêt û wiha digot: “Xwedê û qasidê wî ji soza xwe venagerin.” Paşê berê xwe vegerand dît ku wa ye cewrikekî seyê di bin textê wî de ye û got: “Ev cewrik kengî ketiye hundir?” Hz. ‘Aîşe dibêje: Min got: Bi sond, min ew nedîtiye. Ewî (s.) emr kir, ew cewrik hate derxistin. Vêca Cibrîl (s.) hate bal. Îcar Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Te soz da min, ez ji bo te rûniştim lê tu nehatî.” Cibrîl jî got: Ew segê ku di mala te de bû men‘a min kir. Bêguman em naçine wê mala ku tê de seg û nîgar hebin. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٦٨٩- وَعَنْ أَبِي الْهَيَّاجِ حَيَّانَ بْنِ حُصَيْنٍ قَالَ: قَالَ لِي عَلِيُّ بْنُ أَبِي طَالِبٍ ﷺ: أَلَا أَبْعَثُكَ عَلَى مَا بَعَثَنِي عَلَيْهِ رَسُولُ اللهِ ﷺ أَنْ لَا تَدَعَ صُورَةً إِلَّا طَمَسْتَهَا، وَلَا قَبْراً مُشْرِفاً إِلَّا سَوَّيْتَهُ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1689- Ji Ebû Heyyac Heyyanê kurê Husayn (r.), got: 'Eliyê kurê Ebû Talib (r.) ji min re got: Ma ez te bişînim bi ser wî tiştê ku Pêxemberê Xwedê (s.) ez jî şandibûm bi ser de. Te li kuderê nîgarek dît ewê tune bike û te li kuderê jî goreke bilind dît ewê bi erdê ve rast bike. *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَحْرِيمِ إِتِّخَاذِ الْكَلْبِ إِلَّا لِصَيْدٍ أَوْ مَاشِيَةٍ أَوْ زَرْعٍ

## SEYÊ NÊÇÎRÊ, YÊ ŞIVANIYÊ YAN JÎ YÊ ÇANDINÊ MUSTESNA HERAMBÛNA XWEDÎKIRINA SEGAN

١٦٩٠- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ: قَالَ سَمِعْتُ رَسُولَ اللهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنِ اقْتَنَى كَلْباً إِلَّا كَلْبَ صَيْدٍ أَوْ مَاشِيَةٍ فَإِنَّهُ يَنْقُصُ مِنْ أَجْرِهِ كُلَّ يَوْمٍ قِيرَاطَانِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ: قِيرَاطٌ.

1690- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Kî ji xeynî nêçîrê yan jî şivaniyê seg xwedî bike bêguman ji xêra wî her roj du qîrat kêm dibe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di senedekê de: Yek qîrat.

١٦٩١- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ أَمْسَكَ كَلْباً، فَإِنَّهُ يَنْقُصُ كُلَّ يَوْمٍ مِنْ عَمَلِهِ قِيرَاطٌ إِلَّا كَلْبَ حَرْثٍ أَوْ مَاشِيَةٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: (مَنِ اقْتَنَى كَلْباً لَيْسَ بِكَلْبِ صَيْدٍ وَلَا مَاشِيَةٍ وَلَا أَرْضٍ، فَإِنَّهُ يَنْقُصُ مِنْ أَجْرِهِ قِيرَاطَانِ كُلَّ يَوْمٍ)

1691- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî seyekî dermale bike bêguman ji 'emelê wî her roj qîratek kêm dibe, bes seyê çandinê yan jî yê şivaniyê xaric." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di senedeke Muslim de: Kî ji xeynî seyê nêçîrê, yê şivaniyê û yê erdê seyekî xwedî bike bêguman ji xêra wî her roj du qîrat kêm dibe.

  

## بَابُ كَرَاهِيَةِ تَعْلِيقِ الْجَرَسِ فِي الْبَعِيرِ وَغَيْرِهِ مِنَ الدَّوَابِ
## MEKRÛHBÛNA ALIQANDINA ZENGIL BI STÛYÊ HÊSTIRÊ Û HEYWANEKE DINÊ VE

١٦٩٢-عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (لَا تَصْحَبُ الْمَلَائِكَةُ رُفقَةً فِيهَا كَلْبٌ أَوْ جَرَسٌ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1692- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Milyaket bi wê civata ku digel wan seg yan jî zengil hebe hevaltiyê nakin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٦٩٣- وَعَنْهُ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (الْجَرَسُ مَزَامِيرُ الشَّيْطَانِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ عَلَى شَرْطِ مُسْلِمٍ.

1693- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Zengil ji zurnên şeytên e." *Ebû Dawûd li ser şertê Muslim bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

## بَابُ كَرَاهَةِ رُكُوبِ الْجَلَّالَةِ
## MEKRÛHBÛNA SIWARBÛNA DEVEHAN Û HEYWANÊN KU PÎSIYÊ DIXWE

١٦٩٤- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: نَهَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنِ الْجَلَالَةِ فِي الإِبِلِ أَنْ يُرْكَبَ عَلَيْهَا. رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1694- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji siwarbûna wê deveha ku pîsiyê dixwe nehî kiriye. *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهْيِ عَنِ الْبُصَاقِ فِي الْمَسْجِدِ
## NEHYA JI TIFKIRINA DI MIZGEFTÊ DE

١٦٩٥- عَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللهِ ﷺ قَالَ: (الْبُصَاقُ فِي الْمَسْجِدِ خَطِيئَةٌ، وَكَفَّارَتُهَا دَفْنُهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

وَالْمُرَادُ بِدَفْنِهَا إِذَا كَانَ الْمَسْجِدُ تُرَاباً أَوْ رَمْلاً، أَمَّا إِذَا كَانَ الْمَسْجِدُ مُبَلَّطاً أَوْ مُجَصَّصاً

فَعَلَى مَنْ فَعَلَهَا أَنْ يغْسلهُ وَ ينَظفُهُ.

1695- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Tifkirina di mizgeftê de gunehek e û kefaretê wê jî veşartina wê ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Meqsed û mebest bi veşartina tifê ew e ku wextê binê mizgeftê xwelî yan jî xîz be. Lê wextê binê mizgeftê raxistî be kefaretê tifê paqijkirina wê ye.

١٦٩٦- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ، أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ رَأَى فِي جِدَارِ الْقِبْلَةِ مُخَاطاً، أَوْ بُزَاقاً، أَوْ نُخَامَةً، فَحَكَّهُ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1696- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) di dîwarê aliyê qibla mizgeftê de çilm/lîçik yan tif yan jî belxem dît û ew (bi kevirekî) xeritand. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٦٩٧- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّ هَذِهِ الْمَسَاجِدَ لَا تَصْلُحُ لِشَيْءٍ مِنْ هَذَا الْبَوْلِ وَلَا الْقَذَرِ، إِنَّمَا هِيَ لِذِكْرِ اللَّهِ تَعَالَى، وَقِرَاءةِ الْقُرْآنِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1697- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman ev mîz û qirêjî kêrî van mizgeftana nayên. Bes ev mizgeftana ji bo zikrê Xwedê te'ala û ji bo xwendina Qur'anê hatine avakirin." Û yan jî mîna ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotî. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ كَرَاهَةِ الْخُصُومَةِ فِي الْمَسْجِدِ وَالشِّرَاء وَالإِجَارَة

## MEKRÛHBÛNA MINAQEŞE, DENGBILINDKIRIN, GAZÎKIRINA TIŞTÊ WINDA Û KIRRÎN Û FIROTINA DI MIZGEFTÊ DE

١٦٩٨- عَن أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ سَمِعَ رَجُلاً يَنْشُدُ ضَالَّةً فِي الْمَسْجِد فَلْيَقُلْ: لَا رَدَّهَا الله عَلَيْكَ، فَإِنَّ الْمَسَاجِدَ لَمْ تُبْنَ لِهَذَا). رَوَاهُ مُسْلِم.

1698- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku wî ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye ku wiha digot: "Kî mirovekî ku di mizgeftê de li windaya xwe digere bibîhîze, bila bibêje: Xwedê te'ala wê nîşanî te nede. Lewra mizgeft ji bo vê yekê nehatine avakirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

  

١٦٩٩- وَعَنْهُ، أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (إِذَا رَأَيْتُمْ مَنْ يَبِيعُ أَوْ يَبْتَاعُ فِي الْمَسْجِدِ، فَقُولُوا: لَا أَرْبَحَ الله تِجَارَتَكَ، وَإِذَا رَأَيْتُمْ مَنْ يَنْشُدُ ضَالَّةً فَقُولُوا: لَا رَدَّهَا الله عَلَيْكَ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

1699- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê we yek dît ku di mizgeftê de danûstandinê dike, hûn jê re wiha bibêjin: Xwedê ticareta te bêkar bike. Û wextê we yek dît ku di mizgeftê de li windaya xwe digere, hûn ji wî re jî wiha bibêjin: Xwedê te‘ala wê nîşanî te nede.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

١٧٠٠- وَعَنْ بُرَيْدَةَ ﷺ أَنَّ رَجُلاً نَشَدَ فِي الْمَسْجِدِ فَقَالَ: مَنْ دَعَا إِلَى الْجَمَلِ الأَحْمَرِ؟ فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَا وَجَدْتَ، إِنَّمَا بُنِيَتِ الْمَسَاجِدُ لِمَا بُنِيَتْ لَهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1700- Ji Bureyde (r.) hatiye rîwayetkirin ku mirovek di mizgeftê de li windaya xwe digeriya û vêca got: Kê deveha min ya sor dîtiye? Îcar Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: “Tu wêya qet nebînî. Mizgeft bes ji bo armanca xwe hatine avakirin.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٧٠١- وَعَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ، عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ نَهَى عَنِ الشِّرَاءِ وَالْبَيْعِ فِي الْمَسْجِدِ، وَأَنْ تُنْشَدَ فِيهِ ضَالَّةٌ، أَوْ يُنْشَدَ فِيهِ شِعْرٌ. رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1701- Ji ‘Emrê kurê Şu‘eyb, ji bavê wî, ji kalkê wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) nehî kiriye ji danûstandinan û ji lêgerana windayê yan jî ji xwendina helbestan di mizgeftê de. *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

١٧٠٢- وَعَنِ السَّائِبِ بْنِ يَزِيد الصَّحَابِي ﷺ: كُنْتُ فِي الْمَسْجِدِ فَحَصَبَنِي رَجُلٌ، فَنَظَرْتُ فَإِذَا عُمَرُ بْنُ الْخَطَّابِ ﷺ فَقَالَ: اِذْهَبْ فَائْتِنِي بِهَذَيْنِ، فَجِئْتُهُ بِهِمَا، فَقَالَ: مِنْ أَيْنَ أَنْتُمَا؟ فَقَالَا: مِنْ أَهْلِ الطَّائِفِ، فَقَالَ: لَوْ كُنْتُمَا مِنْ أَهْلِ الْبَلَدِ، لأَوْجَعْتُكُمَا، تَرْفَعَانِ أَصْوَاتَكُمَا فِي مَسْجِدِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1702- Ji Sayîbê kurê Yezîdê sehabî (r.), got: Ez di mizgeftê de bûm, mirovekî kevirekî piçûk avête min û min lê nihêrî ew ‘Umerê kurê Xettab (r.) e. Ewî got: Tu here, wan her du mirovên hanê bîne bal min. Min jî ew anîne bal Hz. ‘Umer (r.) û Hz. ‘Umer ji wan re got: Hûn ji kuderê ne? Ewan gotin: Em xelkê Ta’ifê ne. Ewî (r.) got: Eger hûn ji xelkê vî bajarî bûyana minê hûn biêşandana. Lewra we di mizgefta Pêxemberê Xwedê (s.) de dengê xwe bilind dikir. *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ نَهيِ مَنْ أَكَلَ ثُوماً أَوْ بَصَلاً مِنْ دُخُولِ الْمَسْجِدِ

## NEHYA JI XWARINA SÎRÊ YAN PÎVAZÊ YAN JÎ PIRASÊ WEXTÊ ÇÛYINA MIZGEFTÊ

١٧٠٣- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (مَنْ أَكَلَ مِنْ هَذِهِ الشَّجَرَةِ -يَعْنِي الثُّومَ- فَلَا يَقْرَبَنَّ مَسْجِدَنَا. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم. وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: (مَسَاجِدَنَا)

1703- Ji Îbnu ‘Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: “Kê ji vî giyayî (yanî, dara sîrê) xwaribe bila ew nêzîkî mizgefta me nebe.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di seneda Muslim de: Mizgeftên me.

١٧٠٤- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (مَنْ أَكَلَ مِنْ هَذِهِ الشَّجَرَةِ، فَلَا يَقْرَبنَّا، وَلَا يُصَلِّيَنَّ مَعَنَا. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1704- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kê ji vî giyayî xwaribe bila ew nêzîkî me nebe û bila digel me nimêj jî neke.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٧٠٥- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (مَنْ أَكَلَ ثُوماً أَوْ بَصَلاً، فَلْيَعْتَزِلْنَا) أَوْ (فَلْيَعْتَزِلْ مَسْجِدَنَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: (مَنْ أَكَلَ الْبَصَلَ، وَالثُّومَ، وَالْكُرَّاثَ، فَلَا يَقْرَبَنَّ مَسْجِدَنَا، فَإِنَّ الْمَلَائِكَةَ تَتَأَذَّى مِمَّا يَتَأَذَّى مِنْهُ بَنُو آدَمَ).

1705- Ji Cabir (r.), got: Pêxember (s.) gotiye: “Kê sîr yan jî pîvaz xwaribe bila ji me dûr bikeve yan jî bila ji mizgefta me dûr bikeve.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di senedeke Muslim de: Kê pîvaz, sîr û pirase xwaribe bila nêzîkî mizgefta me nebe. Lewra milyaket ‘aciz dibin ji wî tiştê ku însan jê ‘aciz dibe.”

١٧٠٦- وَعَنْ عُمَرَ بْنِ الخَطَّابِ ﷺ: أَنَّهُ خَطَبَ يَوْمَ الْجُمُعَةِ فَقَالَ فِي خُطْبَتِهِ: ثُمَّ إِنكُمْ أَيُّهَا النَّاسُ تَأْكُلُونَ شَجَرَتَيْنِ مَا أُرَاهُمَا إِلَّا خَبِيثَتَيْنِ: الْبَصَلَ، وَالثُّومَ. لَقَدْ رَأَيْتُ رَسُولَ اللهِ ﷺ إِذَا وَجَدَ رِيحَهُمَا مِنَ الرَّجُلِ فِي الْمَسْجِدِ أَمَرَ بِهِ، فَأُخْرِجَ إِلَى الْبَقِيعِ، فَمَنْ أَكَلَهُمَا، فَلْيُمِتْهُمَا طَبْخاً. رَوَاهُ مُسْلِم.

1706- Ji ‘Umerê kurê Xettab (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî roja înê xutbe xwend, vêca di xutba xwe de got: Paşê, gelî însanan! Hûn du giyayên ku ez wan bes xirab dizanim, dixwin: Pîvaz û sîr. Bêguman min Pêxemberê Xwedê (s.) dît, wextê ew bi bêhna wan her duyan bihesiya ku di mizgeftê de ji mirovekî tê, emr dikir ew mirov heta Beqî‘ê ji mizgeftê dihate dûrxistin. Vêca kesê wan bixwin bila bi pijandinê wan bimirîne. *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ كَرَاهَةِ الإِحْتِبَاءِ يَوْمَ الْجُمُعَةِ وَالإِمَامُ يَخْطُبُ

## MEKRÛHBÛNA RÛNIŞTINA TÛNDAYINÊ (HIBWET) ROJA ÎNÊ WEXTÊ KU ÎMAM XUTBÊ DIXWÎNE.

١٧٠٧- عَنْ مُعَاذِ بْنِ أَنَسٍ الْجُهَنِي ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ نَهَى عَنِ الْحِبْوَةِ يَوْمَ الْجُمُعَةِ وَالإِمَامُ يَخْطُبُ. رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1707- Ji Mu‘azê kurê Enesê Cuheynî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) nehî kiriye ji rûniştina tûndayinê (hibwet) roja înê wextê ku îmam xutbê dixwîne. *Ebû Dawûd û Tirmizî riwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ نَهي مَنْ دخل عليه عشر ذي الحجة واراد ان يضحي عن اخذ شيء من شعره او اطفاره حتى يُضَحِّيَ

## NEHYA JI KURRKIRINA PORÊ SERÎ YAN JÊKIRINA NEYNÛKAN WEXTÊ KU MIROV KETE DEHÊ ZILHICCÊ

١٧٠٨- عَنْ أُمِّ سَلَمَةَ ﷺ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ كَانَ لَهُ ذِبْحٌ يَذْبَحُهُ، فَإِذَا أَهَلَّ هِلَالُ ذِي الْحِجَّةِ، فَلَا يَأْخُذَنَ مِنْ شَعْرِهِ وَلَا مِنْ أَظْفَارِهِ شَيْئاً حَتَّى يُضَحِّيَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1708- Ji Ummu Selemê (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Qurbana kê hebe bila serjêbike. Vêca wextê heyva meha zîlhiccê derket heta ew mirov qurbana xwe serjê neke bila porê xwe kur neke û neynûkên xwe jê neke."

## بَابُ النَّهي عِنْ الْحَلْف بِمَخْلُوق كَالنَّبِيِّ وَالْكَعْبَة وَالْمَلائِكَة وَالسَّمَاء وَالأَبَاء وَالْحَيَاة وَالرُّوح

## NEHYA JI SONDXWARINA BI MEXLÛQAN MÎNA PÊXEMBER, KE'BE, MILYAKETAN, ASÎMANAN, BAVIKAN, JÎNÊ, RUH...

١٧٠٩ - عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى يَنْهَاكُمْ أَنْ تَحْلِفُوا بِآبَائِكُمْ، فَمَنْ كَانَ حَالِفاً، فَلْيَحْلِفْ بِاللَّهِ، أَوْ لِيَصْمُتْ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ فِي الصَّحِيحِ: (فَمَنْ كَانَ حَالِفاً فَلَا يَحْلِفْ إِلَّا بِاللَّهِ أَوْ لِيَسْكُتْ)

1709- Ji Îbnu 'Umer (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Xwedê te'ala nehya we dike ku hûn bi bavê xwe sond bixwin. Kesê sond bixwe bila bi Xwedê sond bixwe yan jî bila hişbe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Senedeke sehîh de: Kesê sond bixwe bes bila bi Xwedê sond bixwe yan jî bila hişbe.

١٧١٠ - وَعَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ سَمُرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَحْلِفُوا بِالطَّوَاغِي، وَلَا بِآبَائِكُمْ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1710- Ji 'Ebdullahê kurê Semure (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn bi taxûtan[1] û bi bavê xwe sond nexwin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٧١١ - وَعَنْ بُرَيْدَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (مَنْ حَلَفَ بِالأَمَانَةِ، فَلَيْسَ مِنَّا). حَدِيثٌ صَحِيح رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بِإِسْنَادٍ صَحِيح.

1711- Ji Bureyde (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî bi emanetê sond bixwe ew ne ji me ye." *Hedîs sehîh e. Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

1 **Taxût**: Ew kes û yan tişt in ku ji heddê xwe derbas dibin, ji bilî Xweda qanûn û destûran derdixin, mirovan ji rêya rast derdixin.

  

١٧١٢- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ حَلَفَ، فَقَالَ: إِنِّي بَرِيءٌ مِنَ الإِسْلَامِ، فَإِنْ كَانَ كَاذِباً، فَهُوَ كَمَا قَالَ، وَإِنْ كَانَ صَادِقاً، فَلَنْ يَرْجِعَ إِلَى الإِسْلَامِ سَالِماً). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد.

1712- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî sond bixwe û bibêje. Ez ji Îslamê dûr im. Eger di sonda xwe de derewîn û virek be ew wekî gotina xwe ye. Eger di sonda xwe de rastbêj be ew saxlem venagere Îslamê." *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

١٧١٣- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ رَجُلاً يَقُولُ: لَا وَالْكَعْبَةِ، قَالَ ابْنُ عُمَرَ: لَا تَحْلِفْ بِغَيْرِ اللَّهِ، فَإِنِّي سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ حَلَفَ بِغَيْرِ اللَّهِ، فَقَدْ كَفَرَ أَوْ أَشْرَكَ).

رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

1713- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji mirovekî bihîst, wiha digot: Naxêr, ez bi Ke'beyê sond dixwim. Vêca Îbnu 'Umer (r.) got: Tu ji bilî Xwedê sond nexwe. Lewra min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Kî ji bilî Xwedê te'ala bi tiştekî dî sond bixwe bêşik ew dibe kafir û yan jî ji Xwedê re şirîk çêdike." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ تَغْلِيظِ الْيَمِينِ الْكَاذِبَةِ عَمْداً

## SONDXWARINA DEREW

١٧١٤- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (مَنْ حَلَفَ عَلَى مَالِ إِمْرِئٍ مُسْلِمٍ بِغَيْرِ حَقِّهِ، لَقِيَ اللهَ وَهُوَ عَلَيْهِ غَضْبَانُ) قَالَ: ثُمَّ قَرَأَ عَلَيْنَا رَسُولُ اللهِ ﷺ مِصْدَاقَهُ مِنْ كِتَابِ اللَّهِ عَزَّ وَجَلَّ: (إِنَّ الَّذِينَ يَشْتَرُونَ بِعَهْدِ اللَّهِ وَأَيْمَانِهِمْ ثَمَناً قَلِيلاً... إِلَى آخِرِ الآيَةِ. آلِ عِمْرَانَ ٧٧). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1714- Ji kurê Mes'ûd (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Kî li ser malê şexsekî misilman bi neheqî sond bixwe (ku malê wî jê bistîne), ew rastî Xwedê tê ku Xwedê jê hêrs e." Rawî dibêje: Paşê Pêxemberê Xwedê (s.) ji me re ji kitêba Xwedê misdaqa vê gotinê. "*Bi rastî ew kesê ku soz û peyman dane Xwedê û sondên xwe erzan difroşin...*"[1] heta dawiya ayetê. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 Alî 'Îmran, 3/77.

١٧١٥ - وَعَنْ أَبِي أُمَامَةَ إِيَاسِ بْنِ ثَعْلَبَةَ الْحَارِثِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (مَنِ اقْتَطَعَ حَقَّ إِمْرِئٍ مُسْلِمٍ بِيَمِينِهِ، فَقَدْ أَوْجَبَ الله لَهُ النَّارَ، وَحَرَّمَ عَلَيْهِ الْجَنَّةَ) فَقَالَ لَهُ رَجُلٌ: وَإِنْ كَانَ شَيْئاً يَسِيراً يَا رَسُولَ الله؟ قَالَ: (وَإِنْ كَانَ قَضِيباً مِنْ أَرَاكٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1715- Ji Ebû Umame Iyasê kurê Sa'lebeyê Harisî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kî heqê şexsekî misilman bi sonda xwe bigire, miheqeq Xwedê ji wî re agir wacib dike û cennetê jî ji wî re heram dike.” Li ser vê yekê miroveki ji Pêxemberê Xwedê (s.) re got: Ya Pêxemberê Xwedê, ew tiştekî piçûk be jî? Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: “Bi qasî çiqileke dara Erakê be jî.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٧١٦ - وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: الْكَبَائِرُ: (الإِشْرَاكُ بِاللَّهِ، وَعُقُوقُ الْوَالِدَيْنِ، وَقَتْلُ النَّفْسِ، وَالْيَمِينُ الْغَمُوسُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

وَفِي رِوَايَةٍ: أَنَّ أَعْرَابِيّاً جَاءَ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ الله مَا الْكَبَائِرُ؟ قَالَ: (الإِشْرَاكُ بِاللَّهِ) قالَ: ثُمَّ مَاذَا؟ قَالَ: (الْيَمِينُ الْغَمُوسُ) قُلْتُ: وَمَا الْيَمِينُ الْغَمُوسُ؟ قَالَ: (الَّذِي يَقْتَطِعُ مَالَ إِمْرِئٍ مُسْلِمٍ يَعْنِي بِيَمِينٍ هُوَ فِيهَا كَاذِبٌ).

1716- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: “Gunehê kebayîr ev in: Çêkirina hevalan ji bo Xwedê, bêemrî û asêbûna ji dê û bavan re, kuştina nefsekê û sonda xamûs e (derew).” *Buxarî rîwayet kiriye.*

Di senedeke Buxarî de: Mirovekî bedewî hate bal Pêxemberê Xwedê (s.) û got: Ya Pêxemberê Xwedê! Gunehê kebayîr çi ne? Ewî (s.) got: “Çêkirina hevalan ji bo Xwedê ye.” Bedewî got: Paşê çi ye? Ewî (s.) got: “Sonda xamûs e.” Bedewî got: Sonda xamûs çi ye? Pêxemberê Xwedê (s.) got: Ew sonda ku malê şexsekî misilman digire. Yanî sonda ku sondxwar tê de derewîn û virek e.

## بَابُ نَدب مَنْ حَلف عَلَى يَمِين فَرَأَى غَيْرهَا خَيْراً مِنْهَا أَنْ يَفْعَل ذَلِكَ الْمَحْلُوف عَلَيْهِ ثُمَّ يكْفر عَنْ يَمِينه

## WEXTÊ MIROV LI SER TIŞTEKÎ SOND BIXWE Û PAŞÊ TIŞTEKÎ JI WÊ XÊRTIR BIBÎNE SUNNET E KU YA XÊR BIKE Û PÊŞ SONDA XWE JÎ KEFARET BIDE

  

١٧١٧- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمنِ بْنِ سَمُرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (وَإِذَا حَلَفْتَ عَلَى يَمِينٍ، فَرَأَيْتَ غَيْرَهَا خَيْراً مِنْهَا، فَاْتِ الَّذِي هُوَ خَيْرٌ، وَكَفِّرْ عَنْ يَمِينِكَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1717- Ji 'Ebdurrehmanê kurê Semure (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: "Wextê te li ser tiştekî sond xwar û vêca te xeynê wê ji wê xêrtir dît, tu wê ya xêrtir bike û ji pêş sonda xwe ve jî kefaret bide." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٧١٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ، أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (مَنْ حَلَفَ عَلَى يَمِينٍ، فَرَأَى غَيْرَهَا خَيْراً مِنْهَا، فَلْيُكَفِّرْ عَنْ يَمِينِهِ، وَلْيَفْعَلِ الَّذِي هُوَ خَيْرٌ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1718- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê li ser tiştekî sond bixwe û vêca xeynê wê ji wê xêrtir bibîne, bila ji pêş sonda xwe ve kefaret bide û bila wî tiştê xêrtir bike." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٧١٩- وَعَنْ أَبِي مُوسَى ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (إِنِّي وَاللَّهِ، إِنْ شَاءَ الله لَا أَحْلِفُ عَلَى يَمِينٍ، ثُمَّ أَرَى خَيْراً مِنْهَا إِلَّا كَفَّرْتُ عَنْ يَمِينِي، وَأَتَيْتُ الَّذِي هُوَ خَيْرٌ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1719- Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman wextê ez –bi sond, eger Xwedê hez bike– li ser tiştekî sond bixwim û paşê tiştekî ji wê xêrtir bibînim miheqeq ezê ji pêş sonda xwe ve kefaret bidim û ewî tiştê xêrtir bikim." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٧٢٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَأَنْ يَلَجَّ أَحَدُكُمْ فِي يَمِينِهِ فِي أَهْلِهِ آثَمُ لَهُ عِنْدَ اللَّهِ تَعَالَى مِنْ أَنْ يُعْطِيَ كَفَّارَتَهُ الَّتِي فَرَضَ الله عَلَيْهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1720- Li gora rîwayeta Ebû Hureyre (r.) wî got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Yek ji we derbarê ehlê xwe de sond bixwe û di sonda xwe de rik bike li bal Xwedê gunehkartir e ji wî qasî ku kefaretê sonda xwe ya ku Xwedê li ser wî ferz kiriye bide." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ الْعَفْوِ عَنْ لَغْوِ الْيَمِين

## BEXŞA JI SONDA LEXÛ (SONDA KU BÊ QESTA SONDXWARINÊ TÊ GOTIN)

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿لَا يُؤَاخِذُكُمُ اللهُ بِاللَّغْوِ فِي أَيْمَانِكُمْ وَلَكِنْ يُؤَاخِذُكُمْ بِمَا عَقَّدْتُمُ الأَيْمَانَ فَكَفَّارَتُهُ إِطْعَامُ عَشَرَةِ مَسَاكِينَ مِنْ أَوْسَطِ مَا تُطْعِمُونَ أَهْلِيكُمْ أَوْ كِسْوَتُهُمْ أَوْ تَحْرِيرُ رَقَبَةٍ فَمَنْ لَمْ يَجِدْ فَصِيَامُ ثَلَاثَةِ أَيَّامٍ ذَلِكَ كَفَّارَةُ أَيْمَانِكُمْ إِذَا حَلَفْتُمْ وَاحْفَظُوا أَيْمَانَكُمْ﴾

*"Xwedê te'ala bi sondên we yên nejidil we xwarine li we nagire. Lê di wê sondê de we digre ewa we ji dil xwarî. Vêca (heger bi evî rengî we sond xwar û we şikand yan we xwest ku hûn bişkênin) cezayê wê, têrkirina deh mirovên belengaz e ji zadê navîncî, ewê hûn didine mala xwe, yan jî kinc lê kirina wan e (wan dehan her yekî kincek) yan jî azadkirina 'ebedekî/ bendeyekî ye. Vêca heçî yê tu ji van nedît, divêt sê rojiyan bigre. Eva ye kefaretê sonda we, eger we şikand. Sonda xwe biparêzin."*[1]

١٧٢١ – وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: أُنْزِلَتْ هَذِهِ الآيَةُ: (لَا يُؤَاخِذُكُمُ اللهُ بِاللَّغْوِ فِي أَيْمَانِكُمْ) فِي قَوْلِ الرَّجُلِ: لَا وَاللَّهِ، وَبَلَى وَاللَّهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1721- Ji 'Aîşe (r.), got: Ev ayeta hanê: "Xwedê bi sonda bê niyet li we nagire" derbarê gotina ku yek dibêje: 'Na wellahî û belê wellahî' de nazil bûye. *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ كَرَاهَة الْحلف فِي الْبَيْع وَإِنْ كَانَ صَادِقاً

## MEKRÛHBÛNA SONDXWARINA DI DANÛSTANDINÊ DE ÇENDAN RAST BE JÎ

١٧٢٢ – وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (الْحَلِفُ مَنْفَقَةٌ لِلسِّلْعَةِ، مَمْحَقَةٌ لِلْكَسْبِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1722- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst,

1 Ma'îde, 5/89.

  

wiha digot: "Sond pertalê bazirganî dide firotin, kar û bereketê jî dide rakirin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٧٢٣-عَنْ أَبِي قَتَادَةَ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (إِيَّاكُمْ وَكَثْرَةَ الْحَلِفِ فِي الْبَيْعِ، فَإِنَّهُ يُنَفِّقُ ثُمَّ يَمْحَقُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1723- Ji Ebû Qetade (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye ku wiha digot: "Hûn xwe ji zehf sondxwarina di danûstandinê de biparêzin. Lewra ew rewaca pertalê bazirganiyê pêk bîne jî paşê ewê tune dike." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ كَرَاهَةِ أَنْ يسْأَلَ الإِنْسَان بِوَجْهِ الله غَيْرِ الْجَنَّةِ
## DAXWAZIYA JI BO XATIRÊ XWEDÊ

١٧٢٤- عَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَا يُسْأَلُ بِوَجْهِ الله إِلَّا الْجَنَّةُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ.

1724- Ji Cabir (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bi xatirê Xwedê bes cennet bi tenê tê xwestin." *Ebû Dawûd rîwayet kiriye.*

١٧٢٥- وَعَنِ اِبْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنِ اِسْتَعَاذَ بِاللَّهِ، فَأَعِيذُوهُ، وَمَنْ سَأَلَ بِاللَّهِ، فَأَعْطُوهُ، وَمَنْ دَعَاكُمْ، فَأَجِيبُوهُ، وَمَنْ صَنَعَ إِلَيْكُمْ مَعْرُوفاً فَكَافِئُوهُ، فإِنْ لَمْ تَجِدُوا مَا تكَافِئُونَهُ، فَادْعُوا لَهُ حَتَّى تَرَوْا أَنكُمْ قَدْ كَافَأْتُمُوهُ). حَدِيثٌ صَحِيح رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالنَّسَائِي بِأَسَانِيدِ الصَّحِيحَيْنِ.

1725- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî bi navê Xwedê daxwaza parastinê bike hûn ewî biparêzin, kî bi navê Xwedê tiştekî bixwaze hûn bidinê, kî gazî we bike hûn îcabeta wî bikin û kî qencîk bi we bike hûn wî xelat bikin. Eger we tiştekî ku hûn ewî pê xelat bikin nedît, hûn jê re dua bikin heta ku hûn bizanin ku we bi duayê xwe ew xelat kiriye." *Hedîs sehîh e. Ebû Dawûd û Nesaî bi senedên sehîh rîwayet kirine.*

## بَابُ تَحْرِيم قَوْل شَاهِنْشَاه لِلسُّلْطَان
## HERAMBÛNA GOTINA ŞAHÎNŞAH JI SULTAN RE

١٧٢٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ أَخْنَعَ إِسْمٍ عِنْدَ اللَّهِ عَزَّ وَجَلَّ رَجُلٌ

تَسمَّى مَلِكَ الأَمْلَاكِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

قَالَ سُفْيَانُ بْن عُيَيْنَةَ: (مَلِكُ الأَمْلَاكِ) مِثْلُ شَاهِنشَاه.

1726- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Bêguman siktir û kerîhtirê navan li bal Xwedê ('ezze we celle) ew mirov e ku bi melikê mulûkan tê navdanê." Sufyanê kurê 'Uyeyne (r.) dibêje: Melikê mulûkan mîna şahinşahî ye. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ النَّهي عَنْ مُخَاطَبَة الْفَاسِق وَالْمُبْتَدِع

## NEHYA JI GOTINA "BIRÊZ" JI MIROVÊ FASIQ Û XWEDÎ BID'E RE

١٧٢٧- عَنْ بُرَيْدَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَا تَقُولُوا لِلْمُنَافِقِ سَيِّدٌ، فَإِنَّهُ إِنْ يَكُ سَيِّداً، فقَدْ أَسْخَطْتُمْ رَبَّكُمْ عَزَّ وَجَلَّ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بِإِسْنَادٍ صَحِيح.

1727- Ji Bureyde (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn ji munafiq re nebêjin seyid (birêz). Lewra eger ew bêne mezinkirin, hûnê Rebbê xwe ('ezze we celle) bidine xeyîdandin." *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

## بَابُ كَرَاهَة سبّ الْحُمَّى

## MEKRÛHBÛNA DIJÛNKIRINA JI NEXWEŞIYA TAYÊ RE

١٧٢٨- عَنْ جَابِرٍ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ دَخَلَ عَلَى أُمِّ السَّائِب، أَوْ أُمِّ الْمُسَيِّبِ فَقَالَ: (مَا لَكِ يَا أُمَّ السَّائِبِ -أَوْ يَا أُمَّ الْمُسَيِّبِ-تُزَفْزِفِينَ؟) قَالَتْ: الْحُمَّى لَا بَارَكَ الله فِيهَا، فَقَالَ: (لَا تَسُبِّي الْحُمَّى، فَإِنَّهَا تُذْهِبُ خَطَايَا بَنِي آدَمَ، كَمَا يُذْهِبُ الْكِيرُ خَبَثَ الْحَدِيدِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1728- Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) çû bal Ummu Sa'ib (yan jî Ummu Museyyîb)ê û got: Ya Ummu Sa'ib (yan jî Ummu Museyyîb), tu çima dihejî? Ewê (r.) got: Ta ye, Xwedê bêadan bike. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: Tu ji tayê re dijûna nede, lewra çawa nepax qirêj û zenga hesinê dibe ta jî, gunehê însanan paqij dike." *Muslim rîwayet kiriye.*

  

## بَابُ النَّهي عَنْ سبَ الرِّيح

## NEHYA DIJÛNKIRINA BAYÊ

١٧٢٩- عَنْ أَبِي الْمُنْذِرِ أُبيِّ بْنِ كَعْب ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَا تَسبُّوا الرِّيحَ، فَإِذَا رَأَيْتُمْ مَا تكْرَهُونَ، فَقُولُوا: اللَّهُمَّ إِنَّا نَسْأَلُكَ مِنْ خَيْرِ هَذِهِ الرِّيحِ وَخَيْرِ مَا فِيهَا وَخَيْرِ مَا أُمِرَتْ بِهِ، وَنَعُوذُ بِكَ مِن شَرِّ هَذِهِ الرِّيحِ وَشَرِّ مَا فِيهَا وَشَرِّ مَا أُمِرَتْ بِهِ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1729- Ji Ebû Munzir Ubeyyê kurê Ke'b (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn ji bayê re dijûna nekin. Îcar eger tiştekî ku hûn jê 'aciz in we dît hûn bêjin: Xwedayo! Em ji te qenciya vî bayî, qenciya wî tiştê ku di wî de heyî û qenciya wî tiştê ku ev ba pê hatiye emrkirin dixwazin. Û em xwe dispêrine te ji xerabiya vî bayî, ji xerabiya wî tiştê ku di wî de heyî û ji xerabiya wî tiştê ku ev ba pê hatiye emrkirin." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

١٧٣٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (الرِّيحُ مِنْ رَوْحِ الله، تَأْتِي بِالرَّحْمَةِ، وَتَأْتِي بِالْعَذَابِ، فَإِذَا رَأَيْتُمُوهَا فَلَا تَسُبُّوهَا، وَسَلُوا اللَّهَ خَيْرَهَا، وَاسْتَعِيذُوا بِاللَّهِ مِنْ شَرِّهَا). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

1730- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Ba ji rehmeta Xwedê ye: Rehmetê jî tîne û 'ezabî jî tîne. Vêca wextê we ew dît hûn jê re dijûna nekin, ji Xwedê xêra wî bixwazin û ji xerabiya wî xwe bispêrine Xwedê." *Ebû Dawûd bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

١٧٣١- وَعَنْ عَائِشَةَ، ﷺ، قَالَتْ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ إِذَا عَصَفَتِ الرِّيحُ قَالَ: (اللَّهُمَّ إِنِّي أَسْأَلُكَ خَيْرَهَا، وَخَيْرَ مَا فِيهَا، وَخَيْرَ مَا أُرْسِلَتْ بِهِ، وَأَعُوذُ بِكَ مِنْ شَرِّهَا، وَشَرِّ مَا فِيهَا، وَشَرِّ مَا أُرْسِلَتْ بِهِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1731- Ji 'Aîşe (r.), got: Wextê ba dihat Pêxember (s.) digot: "Xwedayo! Ez ji te qenciya vî bayî, qenciya wî tiştê ku tê de heyî û qenciya wî tiştê ku ew ba pê hatiye şandin dixwazim. Û ez xwe dispêrme te ji xerabiya vî bayî, ji xerabiya wî tiştê ku tê de heyî û ji xerabiya wî tiştê ku ew ba pê hatiye şandin." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ كَرَاهَةِ سبِّ الدِّيك

## MEKRÛHBÛNA DIJÛNKIRINA JI DÎK RE

١٧٣٢- عَنْ زَيْدِ بْنِ خَالِدٍ الْجُهَنِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَا تَسُبُّوا الدِّيكَ، فَإِنَّهُ يُوقِظُ لِلصَّلَاةِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ بِإِسْنَادٍ صَحِيحٍ.

1732- Ji Zeydê kurê Xalidê Cuhenî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Hûn ji dîkan re dijûnan nekin, lewra ew mirovan hişyarî nimêjê dike.” *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهي عَنْ قَوْلِ الإِنْسَانِ: مُطِرْنَا بِنَوْءِ كَذَا

## NEHYA JI GOTINA ÎNSAN: BI SAYA FILAN STÊRKÊ JI ME RE BARAN BARÎ

١٧٣٣- عَن زَيْدِ بْنِ خَالِدٍ الْجُهَنِي ﷺ قَالَ: صَلَّى بِنَا رَسُولُ الله ﷺ صَلَاةَ الصُّبْحِ بِالْحُدَيْبِيَةِ فِي إِثْرِ سَمَاءٍ كَانَتْ مِنَ اللَّيْلِ، فَلَمَّا انْصَرَفَ أَقْبَلَ عَلَى النَّاسِ، فَقَالَ: (هَلْ تَدْرُونَ مَاذَا قَالَ رَبُّكُمْ؟) قَالُوا: الله وَرَسُولُهُ أَعْلَمُ. قَالَ: قَالَ: (أَصْبَحَ مِنْ عِبَادِي مُؤْمِنٌ بِي، وَكَافِرٌ، فَأَمَّا مَنْ قَالَ: مُطِرْنَا بِفَضْلِ اللَّهِ وَرَحْمَتِهِ، فَذلِكَ مُؤمِنٌ بِي كَافِرٌ بِالْكَوَاكَبِ، وَأَمَّا مَنْ قَالَ: مُطِرْنا بِنَوْءِ كَذَا وَكَذَا، فَذلِكَ كَافِرٌ بِي مُؤمِنٌ بِالْكَوْكَبِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1733- Ji Zeydê kurê Xalidê Cuhenî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) nimêja sibehê, li Hudeybiyê piştî barana ku bi şev bariyabû, bi me da kirin. Wextê ew ji nimêjê derket berê xwe da însanan û got: “Hûn dizanin Rebbê we çi got?” Sehabiyan gotin: Xwedê û Pêxemberê wî çêtir dizanin. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Rebbê we dibêje: “Ji ‘ebdê min hinek bi bawermendî û hinek jî bi xwedanenasî îşev li wan bû sibeh; vêca heçîka kesê ku got: Bi saya fezl û rehmeta Xwedê baran ji me re hate barandin, ew bawermendê bi min e û munkirê bi stêrka ne. Û ew kesê ku got: Bi saya filan stêrkê baran ji me re hate barandin ew jî munkirê min e û bawermendê bi stêrka ne.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ تَحْرِيم قَوْله لِمُسْلِمٍ: يَا كَافِرُ

## HERAMBÛNA GOTINA JI MISILMANEKÎ RE: HEY KAFIR

١٧٣٤- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﵄ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (إِذَا قَالَ الرَّجُلُ لأَخِيهِ: يَا كَافِرُ، فَقَدْ بَاءَ بِهَا أَحَدُهُمَا، فَإِنْ كَانَ كَمَا قَالَ وَإِلَّا رَجَعَتْ عَلَيْهِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1734- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Wextê mirovek ji birayê xwe re bêje: Hey kafir, bêguman ew peyv dizîvire bal wan her duyan yekî. Eger ew; wekî wê gotinê be (jixwe xem nîne), lê eger ne wekî wê gotinê be wî çaxî ew peyv dizîvire bal xwediyê xwe ve." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٧٣٥- وَعَنْ أَبِي ذَرٍّ ﵁ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (مَنْ دَعَا رَجُلاً بِالْكُفْرِ، أَوْ قَالَ: عَدُوَّ الله، وَلَيْسَ كَذَلِكَ إِلَّا حَارَ عَلَيْهِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1735- Ji Ebû Zerr (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye ku wiha digot: "Kî gazî yekî bike bi gawiriyê yan jî bibêje: Hey dijminê Xwedê û ew mirov jî ne yekî wisa be, wî çaxî ew peyv dizîvire bal xwediyê xwe ve." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ النَّهي عَنِ الْفَحْشَاء وَبذَاء اللِّسَان

## NEHYA JI ZIMANXIRABIYÊ

١٧٣٦- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَيْسَ الْمُؤْمِنُ بِالطَّعَّانِ، وَلَا اللَّعَّانِ، وَلَا الْفَاحِشِ، وَلَا الْبَذِيِّ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

1736- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mu'minê kamil; ne zemker, ne lanetker, ne xedar û ne jî bêşerm e." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٣٧٣- وَعَنْ أَنَسٍ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا كَانَ الْفُحْشُ فِي شَيْءٍ إِلَّا شَانَهُ، وَمَا كَانَ الْحَيَاءُ فِي شَيْءٍ إِلَّا زَانَهُ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

1737- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Fehşîtî di çi de be, ewî tiştî mutleqa fehş/lekedar dike û şerm û heya di çi de be, ewî tiştî dixemilîne." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

## بَابُ كَرَاهَة التَّقْعِير فِي الْكَلَام وَتَكَلُّف الْفَصَاحَة

## MEKRÛHBÛNA AXAFTINA BI NIYETA KU XELK BIZANE MIROVEKÎ WÊJEMEND Û EDÎB E

١٧٣٨ – عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (هَلَكَ الْمُتَنَطِّعُونَ قَالَهَا ثَلَاثاً). رَوَاهُ مُسْلِم.

1738- Ji kurê Mes'ûd (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Mutenettî' (kesê ku zêdebaziyê di îşa de dike) çûne helakê." Ev gotin sê caran tekrar kir. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٧٣٩ – وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (إِنَّ اللَّهَ يُبْغِضُ الْبَلِيغَ مِنَ الرِّجَالِ الَّذِي يَتَخَلَّلُ بِلِسَانِهِ كَمَا تتخَلَّلُ الْبَقَرَةُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُدَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1739- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman Xweda te'ala dixeyîde ji wî mirovê belîxê ku zimanê xwe di devê xwe de dipêçe wekî wê çêleka ku giyayê bi zimanê xwe dipêçe." *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

١٧٤٠ – وَعَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّ مِنْ أَحَبِّكُمْ إِلَيَّ، وَأَقْرَبِكُمْ مِنِّي مَجْلِساً يَوْمَ الْقِيَامَةِ، أَحَاسِنَكُمْ أَخْلَاقاً، وَإِنَّ أَبْغَضَكُمْ إِلَيَّ، وَأَبْعَدَكُمْ مِنِّي يَوْمَ الْقِيَامَةِ، الثَّرْثَارُونَ، وَالْمُتَشَدِّقُونَ، وَالْمُتَفَيْهِقُونَ). رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

1740- Ji Cabirê (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s. gotiye: "Bêguman di roja qiyametê de, yên ku ez herî pir ji wan hez dikim û herî nêzîkî min, exlaqxweşên we ne. Û bêguman di roja qiyametê de yên ku ez herî pir ji wan hêrs dibim û herî dûrî min, yên ku bi awayê sun'î zêde dipeyvin, yên ku axaftina xwe dirêj dikin û devê xwe pê re tijî dikin û yên ku bi qurretî û pozbilindî devê xwe fireh dikin û diaxivin." *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ كَرَاهَة قَوْله: خَبُثَتْ نَفْسِي

## MEKRÛHBÛNA GOTINA: "EZ ÇIQASÎ PÎS BÛME"

١٧٤١ – عَنْ عَائِشَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَا يَقُولَنَّ أَحَدُكُمْ خَبُثَتْ نَفْسِي، وَلَكِن لِيَقُلْ: لَقِسَتْ نَفْسِي). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1741- Ji 'Aîşe (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Bila tu kes ji we nebêje: Nefsa min xebîs bû, lê bila bêje: Nefsa min xerab bû."[1] *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ كَرَاهَةِ تَسْمِيَةِ الْعِنَبِ كَرْماً

## MEKRÛHBÛNA NAVDANA "TIRÎ" BI "KERMÊ"

١٧٤٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَا تُسَمُّوا الْعِنَبَ الْكَرْمَ، فَإِنَّ الْكَرْمَ الْمُسْلِمُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم، وَهَذَا لَفظ مُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: (فَإِنَّمَا الْكَرْمُ قَلْبُ الْمُؤْمِنِ)

وَفِي رِوَايَةٍ لِلْبُخَارِي وَمُسْلِمْ يَقُولُونَ: (الْكَرْمُ، إِنَّمَا الْكَرْمُ قَلْبُ الْمُؤْمِنِ)

1742-Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn tiriyê bi kermê nav nedin (hûn ji tirî re nebêjin: Kerm), lewra kerm mu'min e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine. Ev lefzê Muslim e.*

Di senedekê de: Bes kerm qelb û dilê mu'min e.

Di senedeke Buxarî û Muslim de: Dibêjin kerm. Lê kerm, qelb û dilê mu'min e.

١٧٤٣- وَعَنْ وَائِلِ بْنِ حُجْرٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: لَا تَقُولُوا: (الْكَرْمُ، وَلَكِنْ قُولُوا: الْعِنَبُ، وَالْحَبَلَةُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1743- Ji Wa'ilê kurê Hucr (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Hûn nebêjin: Kerm. Bes hûn bêjin: Îneb (tirî) û hebele (gûşî)." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهيِ عَنْ وَصْفِ مَحَاسِنِ الْمَرْأَةِ لِرَجُلٍ

## NEHYA JI PESINDAYINA RINDIYA JINAN JI MÊRAN RE

١٧٤٤-عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَا تُبَاشِرِ الْمَرْأَةُ الْمَرْأَةَ، فَتَصِفَهَا لِزَوْجِهَا كَأَنَّهُ يَنْظُرُ إِلَيْهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1744- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bila jin bi jinê re mubaşeretê neke (jin bi jineke din re bi tazî nepelîne û di eynî

1 **Xebûset** û **leqîset** bi eynê manayê ne. Pêxemberê Xwedê (s.) ji gotina peyva 'xebûset'ê nehî kiriye, bi vî awayî Pêxemberê Xwedê (s.) adabê axaftinê hînî ummeta xwe dike.

cihî de ranezên). Lewra dibe ku ew jin ji mêrê xwe re wesfê wê jinika din bide her wekî mêrê wê, wê jinikê bi wî halî dibîne.” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ كَرَاهَة قَوْل الإنْسَان: اللَّهُمَّ إغْفِرْ لِي إنْ شِئْتَ، بَلْ يجْزم بِالطَّلَب

## MEKRÛHBÛNA KU MIROV BÊJE: XWEDAYO! EGER TU DIXWAZÎ MIN BIBEXŞÎNE, LÊ BILA DAXWAZA XWE QET'Î BIBÊJE

١٧٤٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (لَا يقُولَنَّ أَحَدُكُمْ: اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي إِنْ شِئْتَ، اللَّهُمَّ ارْحَمْنِي إِنْ شِئْتَ، لِيَعْزِمِ الْمَسْأَلَةَ، فَإِنَّهُ لَا مُكْرِهَ لَهُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِمٍ: (وَلَكِنْ لِيَعْزِمْ، وَلْيُعْظِمِ الرَّغْبَةَ، فَإِنَّ الله تَعَالَى لَا يَتَعَاظَمُهُ شَيْءٌ أَعْطَاهُ).

1745- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Bila tu kes ji we nebêje: Xwedayo! Heger tu dixwazî min bibexşîne û eger tu dixwazî rehmê li min bike. Bila ew kes daxwaza xwe qetî bike, lewra kesê Xwedê bêgav û mecbûr bike tune.” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

Di senedeke Muslim de: Lê bila daxwaza xwe qetî û qewî bike. Lewra tu tiştê ku Xwedê bide ji wî (c.c.) re mezin nîne.

١٧٤٦- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا دَعَا أَحَدُكُمْ، فَلْيَعْزِمِ الْمَسْأَلَةَ، وَلَا يَقُولَنَّ: اللَّهُمَّ إِنْ شِئْتَ، فَأَعْطِنِي، فَإِنَّهُ لَا مُسْتَكْرِهَ لَهُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1746- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Wextê yekî ji we dua kir bila daxwaza xwe qetî bike û bila nebêje: Xwedayo! Eger tu dixwazî bide min. Lewra kesê Xwedê bêgav û mecbûr bike tune.” *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ كَرَاهَة قَوْل: مَاشَاء الله وَشَاء فُلَانٌ

## MEKRÛHBÛNA GOTINA “EGER XWEDÊ Û FILANKES HEZ BIKIN”

١٧٤٧- عَنْ حُذَيْفَةَ بْنِ الْيَمَانِ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَا تَقُولُوا: مَا شَاءَ الله وَشَاءَ فُلَانٌ، وَلَكِنْ قُولُوا: مَا شَاءَ الله، ثُمَّ شَاءَ فُلَانٌ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد بِإِسْنَادٍ صَحِيح.

1747- Ji Huzeyfeyê kurê Yeman (r.), Pêxember (s.) gotiye: “Hûn Nebêjin: Eger Xwedê û filan kes hez bikin. Lê hûn bibêjin: Heger Xwedê hez bike û paşê jî filan kes hez bike.” *Ebû Dawûd bi senedeke sehîh riwayet kiriye.*

  

## بَابُ كَرَاهَةِ الْحَدِيثِ بَعْدَ الْعِشَاءِ الآخِرَةِ

## MEKRÛHBÛNA AXAFTINA PIŞTÎ 'EŞAYÊ

١٧٤٨ - عَنْ أَبِي بَرْزَةَ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللهِ ﷺ كانَ يَكْرَهُ النَّوْمَ قَبْلَ العِشَاءِ وَالحَدِيثَ بَعْدَهَا. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1748- Ji Ebû Berze (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) razana beriya nimêja 'eşayê û axaftina piştî wê baş nedidît. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٧٤٩ - وَعَنِ اِبْنِ عُمَرَ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللهِ ﷺ صَلَّى العِشَاءَ فِي آخِرِ حَيَاتِهِ، فَلَمَّا سَلَّمَ، قَالَ: (أَرَأَيْتَكُمْ لَيْلَتَكُمْ هَذِهِ؟ فَإِنَّ عَلَى رَأْسِ مِائَةِ سَنَةٍ لَا يَبْقَى مِمَّنْ هُوَ عَلَى ظَهْرِ الأَرْضِ الْيَوْمَ أَحَدٌ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1749- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) di dawiya heyata xwe de nimêja 'eşayê kir, îcar wextê selam da wiha got: "Hûn vê şevê dibînin? Bêguman sed salên din ji yên ku îro li ser rûyê erdê ne, tu kes namîne." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٧٥٠ - وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ: أَنَّهُمْ اِنْتَظَرُوا النَّبِيَّ ﷺ فَجَاءَهُمْ قَرِيباً مِنْ شَطْرِ اللَّيْلِ فَصَلَّى بِهِمْ، يَعْنِي الْعِشَاءَ، قَالَ: ثُمَّ خَطَبَنَا فَقَالَ: (أَلَا إِنَّ النَّاسَ قَدْ صَلُّوا، ثُمَّ رَقَدُوا، وَإِنَّكُمْ لَنْ تَزَالُوا فِي صَلَاةٍ مَا اِنْتَظَرْتُمُ الصَّلَاةَ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1750- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku ew li hêviya Pêxember (s.) bûn, vêca Pêxemberê Xwedê (s.) nêzîkî nîvê şevê hate cem wan û nimêja 'eşayê bi wan da kirin. Enes dibêje: Paşê Pêxemberê Xwedê (s.) ji me re xutbe xwend û wiha got: "Hûn agahdar bibin, bêguman însanan nimêj kirine û razan e. Lê hûn heta ku li benda nimêjê man, hûn her wekî di nimêja de bûn (hûn wisa xwedanxêr bûn)." *Buxarî riwayet kiriye.*

## بَابُ تَحْرِيمِ إِمْتِنَاعِ الْمَرْأَةِ مِنْ فِرَاشِ زَوْجِهَا إِذَا دَعَاهَا وَلَمْ لَهَا عُذْرٍ شَرْعِي

## HERAMBÛNA NEÇÛYINA JINÊ BAL CIHÊ MÊRÊ XWE VE BÊ MAZERETEKE ŞER'Î WEXTÊ MÊR GAZÎ WÊ BIKE

١٧٥١ - عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (إِذَا دَعَا الرَّجُلُ إِمْرَأَتَهُ إِلَى فِرَاشِهِ

فَأَبَتْ، فَبَاتَ غَضْبَانَ عَلَيْهَا، لَعَنَتْهَا الْمَلَائِكَةُ حَتَّى تُصْبِحَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: (حَتَّى تَرْجِعَ).

1751- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê mêr jina xwe gazî nivînê kir û ew jî neçû û mêrê wê jî jê hêrs bû, heta sibehê milyaket lanetê li wê jinikê tînin." *Buxari û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ تَحْرِيم صَوْم الْمَرْأَة وَزَوْجهَا حَاضِر إِلَّا بِإِذْنِهِ

## HERAMBÛNA ROJÎGIRTINA JINIKÊ ROJIYA SUNNET DI HALÊ KU MÊRÊ WÊ JÎ LI MAL BE Û JI WÎ JÎ DESTÛR NESTANDIBE

١٧٥٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (لَا يَحِلُّ لِلمَرْأَةِ أَنْ تَصُومَ وَزَوْجُهَا شَاهِدٌ إِلَّا بِإِذْنِهِ، وَلَا تَأْذَنَ فِي بَيْتِهِ إِلَّا بِإِذْنِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1752- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ne dirust e ji jinê re ku mêrê wê li mal be û bê îzna wî rojî (ya nafile) bigre. Dîsa ne dirust e ji jinê re ku bê destûra mêrê xwe destûra yekî bide ku were mala wî." *Buxari û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ تَحْرِيم رَفْع الْمَأْمُوم رَأْسهُ مِنَ الرُّكُوع أَوْ السُّجُود قَبْلَ الإِمَام

## HERAMBÛNA SERÎ RAKIRINA ME'MÛMÎ/KESÊ LI PEY ÎMAM JI RUKÛ Û SECDÊ BERIYA ÎMAMÎ

١٧٥٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (أَمَا يَخْشَى أَحَدُكُمْ إِذَا رَفَعَ رَأْسَهُ قَبْلَ الإِمَامِ أَنْ يَجْعَلَ الله رَأْسَهُ رَأْسَ حِمَارٍ أَوْ يَجْعَلَ الله صُورَتَهُ صُورَةَ حِمَارٍ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1753- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Qey kes ji we natirse, wextê serê xwe beriya îmam rake, ku Xwedê te'ala serê wî veguherîne serê kerê, yan jî Xweda şeklê wî veguherîne şeklê kerê." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ كَرَاهَة وَضْع الْيَد عَلَى الْخَاصِرَة فِي الصَّلَاة

## MEKRÛHBÛNA DESTDANÎNA LI SER TENIŞTA XWE DI NIMÊJÊ DE

١٧٥٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: نُهِيَ عَنِ الخَصْرِ فِي الصَّلَاةِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1754- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Nehî hatiye kirin ji dest danîna li ser kêlekê di nimêjê de. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ كَرَاهَةِ الصَّلاَةِ بِحَضْرَةِ الطَّعَامِ

## MEKRÛHBÛNA NIMÊJKIRINÊ WEXTÊ KU XWARIN AMADE BE

١٧٥٥- عَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللهِ ﷺ يَقُولُ: (لَا صَلَاةَ بِحَضْرَةِ طَعَامٍ، وَلَا هُوَ يُدَافِعُهُ الأَخْبَثَانِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1755- Ji 'Aîşe (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Wextê xwarin amade be û yan jî wextê ji her du destnimêjan (ya piçûk û ya mezin) yek teng be nimêj nayê kirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهيِ عَنْ رَفْعِ الْبَصَرِ إِلَى السَّمَاءِ فِي الصَّلَاةِ

## NEHYA RAKIRINA ÇAV ALIYÊ JOR VE DI NIMÊJÊ DE

١٧٥٦- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (مَا بَالُ أَقْوَامٍ يَرْفَعُونَ أَبْصَارَهُمْ إِلَى السَّمَاءِ فِي صَلَاتِهِم فَاشْتَدَّ قَوْلُهُ فِي ذَلِكَ حَتَّى قَالَ: لَيَنْتَهُنَّ عَنْ ذلِكَ أَوْ لَتُخْطَفَنَّ أَبْصَارُهُمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1756- Ji Enesê kurê Malik (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Çi dibe li wî qewmê ku di nimêja xwe de çavê xwe bi aliyê asîmanan ve radikin." Pêxemberê Xwedê (s.) gotina xwe ya di vî derbarî de wisa şidand heta ku got: "Yan wê dev ji vê kirinê berdin, yan jî wê çavê wan kor bin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ كَرَاهَةِ الإِلْتِفَاتِ فِي الصَّلَاةِ لِغَيْرِ عذرٍ

## MEKRÛHBÛNA ZÎVIRANDINA SERÊ XWE BI ALIYÊ RAST Û ÇEPÊ VE DI NIMÊJÊ DE BÊ ME'ZERET

١٧٥٧- عَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: سَأَلْتُ رَسُولَ اللهِ ﷺ عَنِ الإِلْتِفَاتِ فِي الصَّلَاةِ؟ فَقَالَ: (هُوَ إِخْتِلَاسٌ يَخْتَلِسُهُ الشَّيْطَانُ مِنْ صَلَاةِ الْعَبْدِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1757- Ji 'Aîşe (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) pirsa zîvirana di

nimêjê de kir? Ewî (s.) got: “Ew pargirtinek e ku şeytan, ji nimêja ‘ebd direvîne.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٧٥٨- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ لِي رَسُولُ الله ﷺ: (إِيَّاكَ وَالإِلْتِفَاتَ فِي الصَّلَاةِ، فَإِنَّ الإِلْتِفَاتَ فِي الصَّلَاةِ هَلَكَةٌ، فَإِنْ كَانَ لا بُدَّ، فَفِي التَّطَوُّعِ لَا فِي الْفَرِيضَةِ).

رَوَاهُ التِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيح.

1758- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji min re got: “Tu xwe ji iltifatê (zîvirandina serê xwe bi aliyê rast û çepê ve) biparêze. Lewra iltifata di nimêjê de helaket e. Eger tu mecbûr mayî di nimêjên sunnet de bike, ne di nimêjên ferz de.” *Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen û sehîh e.*

## بَابُ النَّهي عَنِ الصَّلَاة إِلَى الْقُبُور

## NEHYA JI NIMÊJKIRINÊ DI PÊŞBERÊ GORAN DE

١٧٥٩- عَنْ أَبِي مَرْثَدٍ كَنَّازِ بْنِ الحُصَيْنِ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (لَا تُصَلُّوا إِلَى القُبُورِ، وَلَا تَجْلِسُوا عَلَيْهَا). رَوَاهُ مُسْلِم.

1759- Ji Ebû Mersed Kennazê kurê Husayn (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Hûn pêşberê goran nimêj nekin û li ser wan jî rûnenin.” *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَحْرِيم الْمُرُور بِيْنَ يَدَيَّ الْمُصَلِّي

## HERAMBÛNA DERBASBÛNA DI BER NIMÊJÊ RE

١٧٦٠- عَنْ أَبِي الْجُهَيْم عَبْدِ اللَّهِ بْنِ الْحَارِثِ بْنِ الصِّمَّةِ الأَنْصَارِيَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَوْ يَعْلَمُ المَارُّ بَيْنَ يَدَي المُصَلِّي مَاذَا عَلَيْهِ لَكَانَ أَنْ يَقِفَ أَرْبَعِينَ خَيْراً لَهُ مِنْ أَنْ يَمُرَّ بَيْنَ يَدَيْهِ) قَالَ الرَّاوِي: لَا أَدْرِي قَالَ أَرْبَعِينَ يَوْماً، أَوْ أَرْبَعِينَ شَهْراً، أَوْ أَرْبَعِينَ سَنَةً. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1760- Ji Ebû Cuheym ‘Ebdullahê kurê Harisê kurê Simmetê Ensarî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Eger ew kesê ku di pêşya nimêjkerî re derbas dibe bizanîbûya ku çiqas guneh jê re tê, xêrtir e ji derbasbûna wî ku

  

çilî (roj yan meh yan jî sal) raweste." Rawî dibêje: Ez nizanim ka Pêxemberê Xwedê (s.) got: Çil roj yan çil meh yan jî çil sal. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ كَرَاهَة شرُوع الْمَأْمُوم فِي نَافلة بَعْد شُرُوع الْمؤذِّن فِي إقَامَة الصَّلَاة
## MEKRÛHBÛNA DESTPÊKIRINA ME'MÛMÊ BI NIMÊJEKE SUNNET PIŞTÎ KU BANGBÊJ DEST BI QAMETA NIMÊJÊ KIR

١٧٦١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِذَا أُقِيمَتِ الصَّلَاةُ، فَلَا صَلَاةَ إِلَّا الْمَكْتُوبَةَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1761- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Wextê ji bo nimêjê qamet hate anîn ji xeynê nimêja ferz tu nimêj êdî nayêne kirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ كَرَاهَة تَخْصِيص يَوْم الْجُمُعَة بِصِيَام أَوْ لَيْلَته بِصَلَاة مِنْ بَيْن اللَّيَالِي
## MEKRÛHBÛNA TEXSÎSKIRINA ROJA ÎNÊ BI ROJÎGIRTINÊ YAN JÎ ŞEVA ÎNÊ BI NIMÊJKIRINÊ

١٧٦٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَا تَخُصُّوا لَيْلَةَ الْجُمُعَةِ بِقِيَامٍ مِنْ بَيْنِ اللَّيَالِي، وَلَا تَخُصُّوا يَوْمَ الْجُمُعَةِ بِصِيَامٍ مِنْ بَيْنِ الأَيَّامِ إِلَّا أَنْ يَكُونَ فِي صَوْمٍ يَصُومُهُ أَحَدُكُمْ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1762- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Hûn di navbera şevan de şeva înê xasê bi qiyamê (kirina îbadetê) ve nekin û hûn di navbera rojan de jî roja înê xasê bi rojîgirtinê ve nekin. Bes wextê roja înê rastî rojiya we ya edetî be, ew xaric." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٧٦٣- وَعَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (لَا يَصُومَنَّ أَحَدُكُمْ يَوْمَ الْجُمُعَةِ إِلَّا يَوْماً قَبْلَهُ أَوْبَعْدَهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1763- Dîsa ji wî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Bila tu kes ji we roja înê rojî negire, bes ku rojek ji beriya wê yan jî rojek piştî wê girtibe, wî çaxî dibe." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

  

١٧٦٤- وَعَنْ مُحَمَّدِ بْنِ عَبَّادٍ قَالَ: سَأَلْتُ جَابِراً ﷺ: أَنَهَى النَّبِيُّ ﷺ عَنْ صَوْمِ يَوْمِ الْجُمُعَةِ؟ قَالَ: نَعَمْ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1764- Ji Muhemmedê kurê 'Ebbad (r.), got: Min ji Cabir (r.) pirs kir: Qey Pêxemberê Xwedê (s.) nehî kiriye ji rojîgirtina roja înê? Ewî got: Belê. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٧٦٥- وَعَنْ أُمِّ الْمُؤْمِنِينَ جُوَيْرِيةَ بِنْتِ الْحَارِثِ ﷺ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ دَخَلَ عَلَيْهَا يَوْمَ الْجُمُعَةِ وَهِيَ صَائِمَةٌ، فَقَالَ: (أَصُمْتِ أَمْسِ؟) قَالَتْ: لَا، قَالَ: تُرِيدِينَ أَنْ تَصُومِي غَداً؟ قَالَتْ: لَا، قَالَ: (فَأَفْطِرِي). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1765- Ji dayika mu'minan Cuweyriye ya keça Haris (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) roja înê çû bal wê û ew jî bi rojî bû. Vêca ewî (s.) got: Te do rojî girt? Ewê got: Naxêr. Ewî (s.) got: Tu dixwazî ku tu sibehê rojî bigrî? Ewê got: Naxêr. Ewî (s.) got: Wî çaxî tu bifitire. *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَحْرِيمِ الْوِصَالِ فِي الصَّوْمِ

## HERAMBÛNA WISALA ROJIYÊ (DU ROJ YAN ZÊDETIR LI PEY HEV BÊFITARKIRIN ROJÎ BIGRE)

١٧٦٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ وَعَائِشَةَ ﷺ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ نَهَى عَنِ الْوِصَالِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1766- Ji Ebû Hureyre û ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) nehî kiriye ji 'wisalê' (yanî, du roj yan zêdetir bê fitarkirin li pey hev rojîgirtin). *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٧٦٧- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: نَهَى رَسُولُ اللهِ ﷺ عَنِ الْوِصَالِ. قَالُوا: إِنَّكَ تُوَاصِلُ؟ قَالَ: (إِنِّي لَسْتُ مِثْلَكُمْ، إِنِّي أُطْعَمُ وَأُسْقَى). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

1767- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: "Pêxemberê Xwedê (s.) ji wisalê nehî kir. Vêca sehabiyan ji Pêxemberê Xwedê (s.) re gotin: Lê tu wisalê dikî? Ewî (s.) jî got: "Ez wekî we nînim. Ji aliyê Xwedê ve xwarin û vexwarin ji min re tê dayin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

  

## بَابُ تَحْرِيمِ الْجلُوسِ عَلَى قَبْرٍ

## HERAMBÛNA RÛNIŞTINA LI SER GORAN

١٧٦٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (لأَنْ يَجْلِسَ أَحَدُكُمْ عَلَى جَمْرَةٍ، فَتُحْرِقَ ثِيَابَهُ، فَتَخْلُصَ إِلَى جِلْدِهِ خَيْرٌ لَهُ مِنْ أَنْ يَجْلِسَ عَلَى قَبْرٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1768- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Rûniştina yekî ji we li ser pêloxek agir ku ew pêlox kincê wî bişewtîne û bigihe bedena wî, ev yeka ji wî mirovî re çêtir e ku li ser gorekê rûnê." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهيِ عَنْ تَجْصِيصِ الْقَبْرِ وَالْبِنَاءِ عَلَيْهِ

## NEHYA JI KILSKIRIN Û KIRÊCKIRIN Û AVAHÎÇÊKIRINA LI SER GORAN

١٧٦٩-عَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: نَهَى رَسُولُ اللهِ ﷺ أَنْ يُجَصصَّ الْقَبْرُ، وَأَنْ يُقْعَدَ عَلَيْهِ، وَأَنْ يُبْنَى عَلَيْهِ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1769- Ji Cabir (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) nehî kiriye ji kirêckirin, rûniştin û avahîçêkirina li ser goran. *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَغْلِيظِ تَحْرِيمِ إِبَاقِ الْعَبْدِ مِنْ سَيِّدِهِ

## HERAMBÛNA REVÎNA KOLEYÎ JI SEYÎDÊ XWE

١٧٧٠-عَنْ جَرِيرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: قالَ رَسُولُ اللهِ ﷺ: (أَيُّمَا عَبْدٍ أَبَقَ فَقَدْ بَرِئَتْ مِنْهُ الذِّمَّةُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1770- Ji Cerîrê kurê 'Ebdullah (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kîjan kolê ku ji seyîdê xwe bireve bêguman ew ji 'ehd û zimmetê berî dibe." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٧٧١- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ: (إِذَا أَبَقَ الْعَبْدُ، لَمْ تُقْبَلْ لَهُ صَلاَةٌ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

وَفِي رِوَايَةٍ: (فَقَدْ كَفَرَ)

1771- Dîsa ji wî (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Wextê kole ji seyîdê xwe

bireve nimêja wî nayê qebûlkirin." *Muslim rîwayet kiriye.*

Di senedekê de: Ew dibe gawir.

## بَابُ تَحْرِيمِ الشَّفَاعَةِ فِي الْحُدُود
## HERAMBÛNA MEHDERA DI HUDÛD Û CEZAN DE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿الزَّانِيَةُ وَالزَّانِي فَاجْلِدُوا كُلَّ وَاحِدٍ مِنْهُمَا مِائَةَ جَلْدَةٍ وَلَا تَأْخُذْكُمْ بِهِمَا رَأْفَةٌ فِي دِينِ اللَّهِ إِنْ كُنْتُمْ تُؤْمِنُونَ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الآخِرِ﴾

"Jinika zinaker û mêrê zinaker, her yekî sed qemçûyan lê bidin û bila dilê we li ser hesabê dînê Xwedê nemîne bi wan ve, eger we bawerî bi Xwedê û roja qiyametê heye."[1]

١٧٧٢ – وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂، أَنَّ قُرَيْشاً أَهَمَّهُمْ شَأْنُ الْمَرْأَةِ الْمَخْزُومِيَّةِ الَّتِي سَرَقَتْ فَقَالُوا: مَنْ يُكَلِّمُ فِيهَا رَسُولَ الله ﷺ؟ فَقَالُوا: وَمَنْ يَجتَرِئُ عَلَيْهِ إِلَّا أُسَامَةُ بْنُ زَيْدٍ، حِبُّ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ؟ فَكَلَّمَهُ أُسَامَةُ فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (أَتَشْفَعُ فِي حَدٍّ مِنْ حُدُودِ اللَّهِ تَعَالَى؟) ثُمَّ قَامَ فَاخْتَطَبَ، ثُمَّ قَالَ: (إِنَّمَا أَهْلَكَ الَّذِينَ قَبْلَكُمْ أَنَّهُمْ كَانُوا إِذَا سَرَقَ فِيهِمُ الشَّرِيفُ تَرَكُوهُ، وَإِذَا سَرَقَ فِيهِمُ الضَّعِيفُ، أَقَامُوا عَلَيْهِ الحَدَّ، وَأَيْمُ الله لَوْ أَنَّ فَاطِمَةَ بِنْتَ مُحَمَّدٍ سَرَقَتْ لَقَطَعْتُ يَدَهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمْ.

وَفِي رِوَايةٍ: فَتَلَوَّنَ وَجْهُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: (أَتَشْفَعُ فِي حَدٍّ مِنْ حُدُودِ اللَّهِ؟) قَالَ أُسَامَةُ: اِسْتَغْفِرْ لِي يَا رَسُولَ الله. قَالَ: ثُمَّ أَمَرَ بِتِلْكَ المَرْأَةِ، فَقُطِعَتْ يَدُهَا.

1772- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku rewşa jineka Mexzûmî ya ku dizî kiribû li êla Qureyşiyan giran hat. Vêca wan gotin: Kiyê derbarê wê de bi Pêxemberê Xwedê (s.) re biaxive? Di navbera xwe de gotin: Kes newêre evê yekê ji Pêxember (s.) re bêje ji xeynî Usameyê kurê Zeydê ku Pêxemberê Xwedê (s.) pir jê hez dike. Vêca Usame bi Pêxemberê Xwedê (s.) re axivî. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: "Tu ji bo ketina

[1] Nûr, 24/2.

  

cezayek ji cezayê Xwedê te'ala mehderê dikî?" Paşê rabû axaftin kir û got: Bes yên ku li pêşiya we derbas bûne, çûne helakê bi sedem ku; wextê di nav wan de yekî giregir dizî bikira ew berdidan û wextê yekî belengaz û jar dizî bikira ew ceza dikirin. Bi sond, eger Fatimeya keça Muhemmed jî diziyê bike ezê destê wê jêkim. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di senedekê de: Rengê rûyê Pêxemberê Xwedê (s.) xerab bû û got: Tu ji bo ketina cezayek ji cezayê Xwedê mehderê dikî? Usame (r.) got: Ya Pêxemberê Xwedê! Min bibexşîne. Rawî dibêje: Paşê ewî (s.) emr kir, destê wê jinikê hate birrîn.

## بَابُ النَّهي عَنِ التَّغَوط فِي طَرِيق النَّاس وَظلِّهم وَمَوَارد الْمَاء

## HERAMBÛNA RÎTINA DI RÊYA ÎNSANAN Û SÎBERÊ WAN DE Û DI QERAXÊ AVÊ DE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَالَّذِينَ يُؤْذُونَ الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ بِغَيْرِ مَا اكْتَسَبُوا فَقَدِ احْتَمَلُوا بُهْتَاناً وَإِثْماً مُبِيناً﴾

"Ewên bi neheqî û bê tawan eziyetê li zilam û jinên bawermend dikin; bi sond, ewana sîtem û bêbextiyeke mezin û gunehekî eşkere, dikin."[1]

١٧٧٣- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (اتَّقُوا اللَّاعِنَيْنِ) قَالُوا: وَمَا اللَّاعِنَانِ؟ قَالَ: (الَّذِي يَتَخَلَّى فِي طَرِيقِ النَّاسِ أَوْ فِي ظِلِّهِمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1773- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn xwe biparêzin ji du tiştên ku dibine sedemê lanetê." Sehabiyan gotin: Ew her du tiştên dibine sedemê lanetê çi ne? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ew e ku di rêya însanan de yan jî di sîberê wan de destnimêja xwe ya mezin digre." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهي عَنِ الْبَوْلِ فِي الْمَاءِ الرَّاكِدِ

## NEHYA JI MÎZKIRINA DI AVA SEKINÎ DE

١٧٧٤- عَنْ جَابِرٍ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ نَهَى أَنْ يُبَالَ فِي الْمَاءِ الرَّاكِدِ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1774- Ji Cabir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) nehî

1 Ehzab, 33/58.

kiriye ku di ava sekinî de mîz bê kirin. *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ كَرَاهَة تَفْضِيل الْوَالد بَعْض أَوْلَاده عَلَى بَعْض

## MEKRÛHBÛNA SERDESTGIRTINA HINEK ZAROKAN LI SER HINEKAN

١٧٧٥ - عَنِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ ﷺ: أَنَّ أَبَاهُ أَتَى بِهِ رَسُولَ الله ﷺ فَقَالَ: إِنِّي نَحَلْتُ ابْنِي هَذَا غُلَاماً كَانَ لِي، فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (أَكُلَّ وَلَدِكَ نَحَلْتَهُ مِثْلَ هَذَا؟) فَقَالَ: لَا، فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (فَأَرْجِعْهُ).

وَفِي رِوَايَةٍ: فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (أَفَعَلْتَ هَذَا بِوَلَدِكَ كُلِّهِمْ؟) قَالَ: لَا، قَالَ: (اتَّقُوا اللَّهَ وَاعدِلُوا فِي أَوْلَادِكُمْ) فَرَجَعَ أَبِي، فَرَدَّ تِلْكَ الصَّدَقَةَ.

وَفِي رِوَايَةٍ: فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (يَا بَشِيرُ أَلَكَ وَلَدٌ سِوَى هذَا؟) قَالَ: نَعَمْ، قَالَ: (أَكُلَّهُمْ وَهَبْتَ لَهُ مِثْلَ هَذَا؟) قَالَ: لَا، قَالَ: (فَلَا تُشْهِدْنِي إِذاً، فَإِنِّي لَا أَشْهَدُ عَلَى جَوْرٍ).

وَفِي رِوَايَةٍ: (لَا تُشْهِدْنِي عَلَى جَوْرٍ).

وَفِي رِوَايَةٍ: (أَشْهِدْ عَلَى هَذَا غَيْرِي) ثُمَّ قَالَ: (أَيَسُرُّكَ أَنْ يَكُونُوا إِلَيْكَ فِي الْبِرِّ سَوَاءً؟) قَالَ: بَلَى، قَالَ: (فَلَا إِذاً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1775- Ji Nu'manê kurê Beşîr (r.) hatiye rîwayetkirin ku bavê wî ew anî cem Pêxemberê Xwedê (s.) û got: Min xulamekî xwe bexşande vî kurê xwe. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Gelo, te ji zarokê xwe hemûyan re jî mîna evî bexş kiriye?" Ewî mirovî got: Naxêr. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Tu wê bexşa xwe bizvirîne."

Di senedekê de: Pêxemberê Xwedê (s.) got: Te ev yeka bi temamê zarokên xwe re kiriye? Ewî mirovî got: Naxêr. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: Hûn ji Xwedê bitirsin û di navbera zarokên xwe de dadmendiyê bikin." Li ser vê yekê bavê min poşman bû û ew bexş zivirand.

Di senedekê de: Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ya Beşîr! Ji xeynê evî, tu zarokên te yê din jî hene? Ewî got: Belê. Pêxemberê Xwedê (s.) got: Te mîna evî bexş bi hemûyan re jî kiriye? Ewî got: Naxêr. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: Wî çaxî tu min neke şahid û govan. Lewra ez

nabime şahidê neheqiyê.

Di senedekê de jî: Tu min neke şahidê neheqiyê.

Di senedekê de: "Tu xeynî min bike şahidê vê." Paşê jî Pêxemberê Xwedê (s.) got: Te kêfxweş dike ku ew di qenciyê de wekî hevdu bin? Wî got: Belê. Îcar Pêxemberê Xwedê (s.) jî got: Wî çaxî tu neke. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ تَحْرِيم إِحْدَاد الْمَرْأَة عَلَى مَيِّت فَوْق ثَلَاثَة أَيَّام إِلَّا عَلَى زَوْجِهَا

## HERAMBÛNA ŞÎNGIRTINA JINÊ LI SER MIRIYÊ JI XEYNÊ MÊRÊ XWE

١٧٧٦- عَنْ زَيْنَبَ بِنْتِ أَبِي سَلَمَةَ ﵄ قَالَتْ: دَخَلْتُ عَلَى أُمِّ حَبِيبَةَ، ﵂، زَوْجِ النَّبِيِّ ﷺ حِينَ تُوُفِّيَ أَبُوها أَبُو سُفْيَانَ بْنُ حَرْبٍ ﵁ فَدَعَتْ بِطِيبٍ فِيهِ صُفْرَةٌ: خَلُوقٍ أَوْ غَيْرِهِ، فَدَهَنَتْ مِنْهُ جَارِيةً، ثُمَّ مَسَّتْ بِعَارِضَيْهَا. ثُمَّ قَالَتْ: وَاللَّهِ مَا لِي بِالطِّيبِ مِنْ حَاجَةٍ، غَيْرَ أَني سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ عَلَى الْمِنْبَرِ: (لَا يَحِلُّ لِإمْرَأَةٍ تُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الآخِرِ أَنْ تُحدَّ عَلَى مَيِّتٍ فَوْقَ ثَلَاثِ لَيَالٍ، إِلَّا عَلَى زَوْجٍ أَرْبَعَةَ أَشْهُرٍ وَعَشْراً) قَالَتْ زَيْنَبُ: ثُمَّ دَخَلْتُ عَلَى زَيْنَبَ بِنْتِ جَحْشٍ، ﵂، حِينَ تُوُفِّيَ أَخُوهَا، فَدَعَتْ بِطِيبٍ، فَمَسَّتْ مِنْهُ، ثُمَّ قَالَتْ: أَمَا وَاللَّهِ، مَا لِي بِالطِّيبِ مِنْ حَاجَةٍ، غَيْرَ أَنِّي سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ عَلَى الْمِنْبَرِ: (لَا يَحِلُّ لِإمْرَأَةٍ تُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الآخر أَنْ تُحِدَّ عَلَى مَيِّتٍ فَوْقَ ثَلَاثٍ إِلَّا عَلَى زَوْجٍ أَرْبَعَةَ أَشْهُرٍ وَعَشْراً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1776- Ji Zeyneba keça Ebû Seleme (r.), got: Ez çûme bal Ummu Hebîbe (r.) ya xanima Pêxemberê Xwedê (s.) wextê bavê wê Ebû Sufyanê kurê Herb (r.) wefat kiribû. Ewê (r.) bêhneka ku tê de ava zera bêhnxweş yan jî bêhneke din xwest. Vêca cariyekî hinek ji wê bêhna xweş li xwe da, paşê jî ewê (r.) jî ew bêhn li her du lamê xwe da û paşê jî got: Bi sond, hewceya min bi bêhnê tune, lê min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, li ser mînberê wiha digot: "Ne helal e li wê jina ku bawerî bi Xwedê û bi roja qiyametê aniye li ser miriyekî ji sê rojan zêdetir şîn bike. Bes li ser mêrê xwe heta çar meh û deh rojan şîn dike." Zeyneb dibêje: Paşê ez çûme bal Zeyneba keça Cehş (r.) wextê birayê wê wefat kiribû. Ewê (r.) bêhn xwest, hinek ji wê bêhnê li xwe da û paşê jî got: Bi sond, hewceya min bi bêhnê tune, lê

min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, li ser mînberê wiha digot: "Ne helal e li wê jina ku bawerî bi Xwedê û bi roja qiyametê aniye li ser miriyekî ji sê rojan zêdetir şînê bigre. Bes li ser mêrê xwe heta çar meh û deh rojan dikare şîn bigre." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ تَحْرِيمِ بَيْعِ الْحَاضِرِ لِلبادِي وَتَلَقِي الرُّكْبَانِ

## HERAMBÛNA SIMSARIYA BAJARÎ JI GUNDÎ RE, PÊŞWAZIYA BI GUNDIYAN DI XEYNÊ CIHÊ BAZARÊ DE

١٧٧٧- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: نَهَى رَسُولُ الله ﷺ أَنْ يَبِيعَ حَاضِرٌ لِبَادٍ وَإِنْ كانَ أَخَاهُ لأَبِيهِ وَأُمِّهِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1777- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) nehî kiriye ku bajarî ji gundî re malê wî bifroşe, çendan ewê gundî birayê wî yê ji bav û dayikê be jî. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٧٧٨- وَعَنِ اِبْنِ عُمَر قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَا تَتَلَقَّوُا السِّلَعَ حَتَّى يُهْبَطَ بِهَا إِلَى الأَسْوَاقِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1778- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê gotiye: "Heta gundî malê xwe yê firotinê neyne cihê bazarê û bihayê bazarê hîn nebe hûn neçine pêşya wî." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٧٧٩- وَعَنِ اِبْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَتَلَقَّوُا الرُّكْبَانَ، وَلَا يَبِعْ حَاضِرٌ لِبَادٍ) فَقَالَ لَهُ طَاووسُ: مَا قَوْله: لَا يَبِعْ حَاضِرٌ لِبَادٍ؟ قَالَ: لَا يَكُونُ لَهُ سِمْسَاراً. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1779- Ji kurê 'Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Hûn gundiyan di rê de ji xeynê cihê bazarê de pêşwazî nekin û bila bajarî malê gundî jî nefroşe." Vêca Tawûs ji kurê 'Ebbas (r.) re got: Mana gotina Pêxemberê Xwedê (s.) ku dibêje: "Bila bajarî malê gundî nefroşe" çi ye? Ewî (r.) got: Yanî, bila bajarî ji gundî re nebe simsar. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٧٨٠ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: نَهَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ أَنْ يَبِيعَ حَاضِرٌ لِبَادٍ، وَلَا تَنَاجَشُوا وَلَا يَبِيعُ الرَّجُلُ عَلَى بَيْعِ أَخِيهِ، وَلَا يَخْطُبُ عَلَى خِطْبَةِ أَخِيهِ، وَلَا تَسْأَلُ الْمَرْأَةُ طَلَاقَ أُخْتِهَا لِتَكْفَأَ مَا فِي إِنَائِهَا.

وَفِي رِوَايَةٍ قَالَ: نَهَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنِ التَّلَقِّي وَأَنْ يَبْتَاعَ الْمُهَاجِرُ لِلأَعْرَابِيِّ، وَأَنْ تَشْتَرِطَ الْمَرْأَةُ طَلَاقَ أُخْتِهَا، وَأَنْ يَسْتَامَ الرَّجُلُ عَلَى سَوْمِ أَخِيهِ، وَنَهَى عَنِ النَّجَشِ وَالتَّصْرِيَةِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1780- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) nehî kiriye ku bajarî malê gundî bifroşe, hûn bazarê li hevdu tûj nekin, bila tu kes li ser bazara birayê xwe bazarê neke û bila tu kes daxwaza destgirtina destgirtiya birayê xwe neke. Û bila jinik daxwaza berdana xuşka xwe neke ji bo ku firaxa wê biqelibîne.

Di senedekê de: Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) nehî kiriye ji pêşwaziya di rê de, ji firotina muhacirê malê bedewî, ji şertkirina jinikê berdana xuşka xwe, ji bazara mirovî li ser bazara birayê xwe û hem nehî kiriye ji tûjkirina bazarê û ji nedohtina şîr ku di gihanê heywanê de bi çend rojan şîr bihêle. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٧٨١ - وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (لَا يَبِعْ بَعْضُكُمْ عَلَى بَيْعِ بَعْضٍ، وَلَا يَخْطُبْ عَلَى خِطْبَةِ أَخِيهِ إِلَّا أَنْ يَأْذَنَ لَهُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1781- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bila kes ji we li ser bazara birayê xwe bazarê neke û bila kes ji we daxwaza destgirtina destgirtiya birayê xwe neke." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٧٨٢ - وَعَنْ عُقْبَةَ بْنِ عَامِرٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (الْمُؤْمِنُ أَخُو الْمُؤْمِنِ، فَلَا يَحِلُّ لِمُؤْمِنٍ أَنْ يَبْتَاعَ عَلَى بَيْعِ أَخِيهِ وَلَا يَخْطُبَ عَلَى خِطْبَةِ أَخِيهِ حَتَّى يَذَرَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1782- Ji 'Uqbeyê kurê 'Amir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mu'min, birayê mu'min e. Vêca ne helal e ji mu'min re ku li ser bazara birayê xwe bazarê bike û daxwaza destgirtina destgirtiya birayê xwe bike. Heta ku biterikîne, wî çaxî helal dibe ku wisa bike." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهي عَنْ إِضَاعَة الْمَال

## NEHYA JI ZAYÎKIRINA MAL DI XEYNÊ CIHÊ ŞER'Î DE

١٧٨٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى يَرْضَى لَكُمْ ثَلَاثاً، وَيَكْرَهُ لَكُمْ ثَلَاثاً: فَيَرْضَى لَكُمْ أَنْ تَعْبُدوهُ، وَلَا تُشْرِكُوا بِهِ شَيْئاً، وَأَنْ تَعْتَصِمُوا بِحَبْلِ اللَّهِ جَمِيعاً وَلَا تَفرَّقُوا، وَيَكْرَهُ لَكُمْ: قِيلَ وَقَالَ، وَكَثْرَةَ السُّؤَالِ، وَإِضَاعَةِ الْمَالِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1783- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman Xweda te'ala ji sê kirinên we razî dibe û ji sê kirinên we jî dikerihe. Razî dibe ku hûn îbadetê wî bikin, tu tiştekî nekin şerikê wî û hûn hemû xwe bi dînê Xwedê û bi kitêba wî ve bigrin û ji hevdu belav nebin. Û Xwedê te'ala dikerihe ku hûn qîlûqalê bikin, zehf pirsa pirs bikin û mal zayî bikin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٧٨٤- وَعَنْ وَرَّادٍ كَاتِبِ الْمُغِيرةَ بْنِ شُعْبَةَ قَالَ: أَمْلَى عَلَيَّ الْمُغِيرَةُ فِي كِتَابٍ إِلَى مُعَاوِيَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يَقُولُ فِي دُبُرِ كُلِّ صَلَاةٍ مَكْتُوبةٍ: (لَا إِلهَ إِلَّا الله وَحْدَهُ لَا شَرِيكَ لَهُ، لَهُ المُلْكُ وَلَهُ الْحَمْدُ وَهُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ، اللَّهُمَّ لَا مَانِعَ لِمَا أَعْطَيْتَ، وَلَا مُعْطِيَ لِمَا مَنَعْتَ، وَلَا يَنْفَع ذَا الْجَدِّ مِنْكَ الْجَدُّ) وَكَتَبَ إِلَيْهِ أَنَّهُ كَانَ يَنْهَى عَنْ قِيلَ وَقَالَ، وَإِضَاعَةِ الْمَالِ، وَكَثْرَةِ السُّؤَالِ، وَكَانَ يَنْهَى عَنْ عُقُوقِ الأُمَّهَاتِ، وَوَأْدِ الْبَنَاتِ، وَمَنْعٍ وَهَاتِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1784- Ji Werradê nivîsvanê Muxîreyê kurê Şu'be, got: Muxîre di wê nameya ku wê ji Mu'awiye (r.) re bişanda bi min da nivîsandin ku Pêxember (s.) piştî her nimêja ferz wiha digot: 'Ji xeynê Xwedê tu îlah tune, ew bi tenê ye û tu şerîkê wî tune, mulk her ji wî re ye û hemd jî her ji wî re ye. Ew li ser her tiştî şiyandar e. Xwedayo! Tu mani' ji dayina te re û tu dayî jî ji pêşgirya te re tune. Xwediyê heyiyê tu feydê nade û heyî jî her ji te ye.' Û ewî ji Mu'awiye (r.) re eva jî nivîsî: Bêguman Pêxemberê Xwedê (s.) ji qîlûqalê, ji zayîkirina mal û ji pir pirs pirsînê nehî kiriye. Û Pêxemberê Xwedê (s.) dîsa nehî kiriye ji bêemriya dê û bavan, ji çalkirina keçan bi saxî û ji nedayina tiştê ku dayina wî wacib e û daxwaza tiştê ku heqê wî nîne. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

  

## بَابُ النَّهي عَنِ الإِشَارَةِ إِلَى مُسْلِم بِسِلاحٍ وَنَحْوِه
## NEHYA JI ÎŞARETKIRINA BAL MISILMAN VE BI ÇEKÊ

١٧٨٥ - عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا يُشِرْ أَحَدُكُمْ إِلَى أَخِيهِ بِالسِّلَاحِ، فَإِنَّهُ لَا يَدْرِي لَعَلَّ الشَّيْطَانَ يَنْزِعُ فِي يَدِهِ، فَيَقَعَ فِي حُفْرَةٍ مِنَ النَّارِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلِم قَالَ: قَالَ أَبُو الْقَاسِمِ ﷺ: (مَنْ أَشَارَ إِلَى أَخِيهِ بِحَدِيدَةٍ، فَإِنَّ الْمَلَائِكَةَ تَلْعَنُهُ حَتَّى يَنْزِعَ، وَإِنْ كَانَ أَخَاهُ لِأَبِيهِ وَأُمِّه).

1785- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Bila tu kes ji we bi çekê îşaretî bal birayê xwe ve neke. Lewra bêguman ew nizane ku belkî şeytan di destê wî de çekê bê hemdê wî bifilitîne. Vêca ew bikeve çaleke di êgir de.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di senedeke Muslim de: Ebû Hureyre (r.), got: Ebû Qasim (s.) gotiye: “Kî bi hesinekî îşaretê bal birayê xwe ve bike, bêguman milyaket heta ku ew wî hesinî ji destê xwe daneyne wisa lanetê lê dikin. Çenda birayê wî yê ji dê û bavê be jî.

١٧٨٦ - وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: نَهَى رَسُولُ الله ﷺ أَنْ يُتَعَاطَى السَّيْفُ مَسْلُولاً. رَوَاهُ أَبُو دَاوُد وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ.

1786- Ji Cabir (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) nehî kiriye ku şûrê tazî bê dayin û standin. *Ebû Dawûd û Tirmizî rîwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen e.*

## بَابُ كَرَاهَة الْخُرُوج مِنَ الْمَسْجِدِ بَعْدَ الأَذَان إِلَّا لِعُذْرٍ
## MEKRÛHBÛNA DERKETINA JI MIZGEFTÊ PIŞTÎ BANGÊ BÊ ME‘ZERET

١٧٨٧ -عَنْ أَبِي الشَّعْثَاءِ قَال: كُنَّا قُعُوداً مَعَ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ فِي الْمَسْجِدِ، فَأَذَّنَ الْمُؤَذِّنُ، فَقَامَ رَجُلٌ مِنَ الْمَسْجِدِ يَمْشِي، فَأَتْبَعَهُ أَبُو هُرَيْرَةَ بَصَرَهُ حَتَّى خَرَجَ مِنَ الْمَسْجِدِ، فَقَالَ أَبُو هُرَيْرَةَ: أَمَّا هَذَا فَقَدْ عَصَى أَبَا الْقَاسِمِ ﷺ. رَوَاهُ مُسْلِم.

1787- Ji Ebû Şe‘sa, got: Em digel Ebû Hureyre (r.) di mizgeftê de rûniştibûn,

vêca mu'ezzin bang da û mirovek jî ji mizgeftê rabû meşiya. Ebû Hureyre (r.) jî bi çavê xwe ew taqîb kir heta ku ew mirov ji mizgeftê derket, vêca Ebû Hureyre (r.) got: Evî mirovê hanê bêemriya Ebû Qasim (s.) kir. *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ كَرَاهَةِ رَدِّ الرَّيحَانِ لِغَيْرِ عُذْرٍ
## MEKRÛHBÛNA REDKIRINA BÊHNÊ

١٧٨٨ - عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ عُرِضَ عَلَيْهِ رَيْحَانٌ، فَلَا يَرُدَّهُ، فَإِنَّهُ خَفِيفُ المَحْمِلِ، طَيِّبُ الرِّيحِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1788- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kesê ku jê re bêhn bê pêşkêşkirin bila wê red neke. Lewra hilgirtina wê sivik e û bêhna wê jî xweş e." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٧٨٩ - وَعَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ لَا يَرُدُّ الطِّيبَ. رَوَاهُ البُخَارِي.

1789- Ji Enesê kurê Malik (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) qet bêhn red nedikir. *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ كَرَاهَةِ الْمَدْحِ فِي الْوَجْهِ لِمَنْ خِيفَ عَلَيْهِ مَفْسَدَةٌ مِنْ إِعْجَابٍ وَنَحْوِهِ
## MEKRÛHBÛNA DI RÛ DE PESNANDINA WÎ KESÊ KU QURRE DIBE

١٧٩٠ - عَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: سَمِعَ النَّبِيُّ ﷺ رَجُلاً يُثْنِي عَلَى رَجُلٍ وَيُطْرِيهِ فِي الْمِدْحَةِ، فَقَالَ: (أَهْلَكْتُمْ) أَوْ (قَطَعْتُمْ ظَهْرَ الرَّجُلِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1790- Ji Ebû Mûsayê Eş'arî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst ku mirovek pesnê yekî dide û di pesnê de jî mubalexe dike, vêca wî (s.) wiha got: "We ew mirov bire helakê yan jî we pişta wî şikand." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٧٩١ - وَعَنْ أَبِي بَكْرَةَ ﷺ: أَنَّ رَجُلاً ذُكِرَ عِنْدَ النَّبِيِّ ﷺ، فَأَثْنَى عَلَيْهِ رَجُلٌ خَيْراً، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (وَيْحَكَ، قَطَعْتَ عُنُقَ صَاحِبِكَ) يَقُولُهُ مِرَاراً (إِنْ كَانَ أَحَدُكُمْ مَادِحاً لَا مَحَالَةَ، فَلْيَقُلْ: أَحْسِبُ كَذَا وَكَذَا إِنْ كَانَ يَرَى أَنَّهُ كَذَلِكَ وَحَسِيبُهُ اللهُ، وَلَا يُزَكَّى عَلَى اللهِ أَحَدٌ) رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

  

1791- Ji Ebû Bekire (r.) hatiye rîwayetkirin ku behsa mirovekî li cem Pêxember (s.) hate kirin û mirovekî din jî pesnê wî bi qenciyê da. Vêca Pêxember (s.) got: "Heyfa te! Te stûyê birayê xwe qetand." Ev gotin çend caran tekrar kir û got: "Heger yek ji we mitleqa wê pesna bide bila bêje: Ez dibêjim qey ku ew wiha û wiha ye. Û wextê evê dibêje bizanbe ku ew mirov jî wekî zenna wî ye. Xwedê hundirê wî çêtir dizane. Bila tu kes bi şahidî û govaniya Xwedê neyê tezkiyekirin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٧٩٢- وَعَنْ همَّام بْنِ الْحَارِثِ، عَنِ الْمِقْدَادِ ﷺ: أَنَّ رَجُلاً جَعَلَ يَمْدَحُ عُثمَانَ ﷺ فعَمِدَ الْمِقْدَادُ، فَجَثَا عَلَى رُكْبَتَيْهِ، فَجَعَلَ يَحْثُو فِي وَجْهِهِ الْحَصْبَاءَ، فقَالَ لَهُ عُثْمَانُ: مَا شَأْنُكَ؟ فَقَالَ: إِنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (إِذَا رَأَيْتُمُ المَدَّاحِينَ، فَاحْثُوا فِي وُجُوهِهِمُ التُّرَابَ) رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1792- Ji Hemmamê kurê Haris, ji Mîqdad (r.) rîwayet kiriye ku mirovekî rojekê pesnê Hz. Osman (r.) da. Mîqdad paldayîbû vêca rabû û çok da û dest pê kir kevir avête ser çavê pesinkar. Hz. Osman (r.) ji Mîqdad re got: Çi dibe bi te? Ewî got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê we pesinkar dîtin hûn xweliyê bavêjine ser çavê wan." *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ كَرَاهَةِ الْخُرُوجِ مِنْ بَلَدٍ وَقَعَ فِيهِ الْبَلَاءِ

## MEKRÛHBÛNA DERKETINA JI WÎ CIHÊ KU NEXWEŞIYA WEBAYÊ TÊ DE HEYE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿أَيْنَمَا تَكُونُوا يُدْرِكْكُمُ الْمَوْتُ وَلَوْ كُنْتُمْ فِي بُرُوجٍ مُشَيَّدَةٍ﴾

"Hûn li kuderê bin, hûn di kehlê asê de bin jî, dê mirin bigihêje we."[1]

﴿وَلَا تُلْقُوا بِأَيْدِيكُمْ إِلَى التَّهْلُكَةِ﴾

"Hûn xwe bi destê xwe neavêjine helakê."[2]

١٧٩٣- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ: أَنَّ عُمَرَ بْنَ الْخَطَّابِ ﷺ خَرَجَ إِلَى الشَّامِ حَتَّى إِذَا كَانَ

1 Nîsa, 4/78.

2 Beqere, 2/195.

بِسَرْغ لَقِيَهُ أُمَرَاءُ الأَجْنَادِ - أَبُو عُبَيْدَةَ بْنُ الْجَرَّاحِ وَأَصْحَابُهُ - فَأَخْبَرُوهُ أَنَّ الْوَبَاءَ قَدْ وَقَعَ بِالشَّام. قَالَ اِبْنُ عَبَّاسٍ: فَقَالَ لِي عُمَرُ: ادْعُ لِي الْمُهَاجِرِينَ الأَوَّلِينَ، فَدَعَوْتُهُمْ، فَاسْتَشَارَهُمْ، وَأَخْبَرَهُمْ أَنَّ الْوَبَاءَ قَدْ وَقَعَ بِالشَّامِ، فَاخْتَلَفُوا، فَقَالَ بَعْضُهُمْ: خَرَجْتَ لأَمْرٍ، وَلَا نَرَى أَنْ تَرْجِعَ عَنْهُ، وَقَالَ بَعْضُهُمْ: مَعَكَ بَقِيَّةُ النَّاسِ وَأَصْحَابُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَلَا نَرَى أَنْ تُقْدِمَهُمْ عَلَى هَذَا الْوَبَاءِ، فَقَالَ: ارْتَفِعُوا عَنِّي، ثُمَّ قَالَ: ادْعُ لِيَ الأَنْصَارَ، فَدَعَوْتُهُمْ، فَاسْتَشَارَهُمْ، فَسَلَكُوا سَبِيلَ الْمُهَاجِرِينَ، وَاختَلَفُوا كَاخْتِلَافِهِمْ، فَقَالَ: ارْتَفِعُوا عَنِّي، ثُمَّ قَالَ: ادْعُ لِيَ مَنْ كَانَ هَهُنَا مِنْ مَشِيخَةِ قُرَيْشٍ مِنْ مُهَاجِرَةِ الْفَتْحِ، فَدَعَوْتُهُمْ، فَلَمْ يَخْتَلِفْ عَلَيْهِ مِنْهُمْ رَجُلَانِ، فَقَالُوا: نَرَى أَنْ تَرْجِعَ بِالنَّاسِ، وَلَا تُقْدِمَهُمْ عَلَى هذَا الْوَبَاءِ، فَنَادَى عُمَر ﷺ فِي النَّاسِ: إِنِّي مُصْبِحٌ عَلَى ظَهْرٍ، فَأَصْبِحُوا عَلَيْهِ، فَقَالَ أَبُو عُبَيْدَةَ بْنُ الجَرَّاحِ ﷺ: أَفِرَاراً مِنْ قَدَرِ الله؟ فَقَالَ عُمَرُ ﷺ: لَوْ غَيْرُكَ قَالَهَا يَا أَبَا عُبَيْدَةَ -وكَانَ عُمَرُ يَكْرَهُ خِلَافَهُ- نَعَمْ نَفِرُّ مِنْ قَدَرِ اللَّهِ إِلَى قَدَرِ اللَّهِ، أَرَأَيْتَ لَوْ كَانَ لَكَ إِبِلٌ، فَهَبَطَتْ وَادِياً لَهُ عُدْوَتَانِ، إِحْدَاهُمَا خَصِبَة، وَالأُخْرَى جَدْبَةٌ، أَلَيْسَ إِنْ رَعَيْتَ الخَصْبَةَ رَعَيْتَهَا بِقَدَرِ اللَّهِ، وَإِنْ رَعَيْتَ الْجَدْبَةَ رَعَيْتَهَا بِقَدَرِ اللَّهِ؟ قَالَ: فَجَاءَ عَبْدُ الرَّحْمَنِ بْنُ عَوْفٍ ﷺ وَكَانَ مُتَغَيِّباً فِي بَعْضِ حَاجَتِهِ، فَقَالَ: إِنَّ عِنْدِي مِنْ هَذَا عِلْماً، سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (إِذَا سَمِعْتُمْ بِهِ بِأَرْضٍ، فَلَا تَقْدَمُوا عَلَيْهِ، وَإِذَا وَقَعَ بِأَرْضٍ وَأَنْتُمْ بِهَا، فَلَا تَخْرُجُوا فِرَاراً مِنْهُ) فَحَمِدَ الله تَعَالَى عُمَرُ ﷺ وَانْصَرَفَ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1793- Ji kurê 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku 'Umerê kurê Xettab (r.) baskî Şamê ve çû heta ku gihîşte Serxê (gundekî Şamê ye û bi qasî sêzdeh qonaxan dûrê Medînê ye). Vêca fermandarê artêşê –Ebû 'Ubeydeyê kurê Cerrah û digel hevalê xwe– hatin pêşwaziya wî û agahî dane wî ku di Şamê de weba derketiye. 'Ebdullahê kurê 'Ebbas (r.) dibêje: Hz. 'Umer (r.) ji min re got: Tu gazî Muhacirê pêşin bike bila werine bal min. Min jî gazî wan kir. Hz. 'Umer (r.) bi wan şêwirî û ew agahdar kirin ku di Şamê de weba derketiye. Vêca wan îxtilaf kirin, ji wan hineka gotin: Tu ji bo

karekî derketî, vêca em pêwist nabînin ku tu ji wî karî bizvirî. Hinekê wan jî gotin: Mayiyê însan û eshabê Pêxemberê Xwedê (s.) bi te re ne, vêca em rewa nabînin ku tu wan bibî nav wê webayê. Îcar Hz. 'Umer (r.) wextê ev îxtilaf dît ji wan re got: Hûn ji min dûr bikevin. 'Ebdullahê kurê 'Ebbas (r.) dibêje: Paşê Hz. 'Umer (r.) got: Tu gazî Ensara bike bila werine bal min. Min gazî wan kir. Hz. 'Umer (r.) di vê derbarê de bi wan şêwirî. Ew jî di rêya muhaciran de meşiyan û van jî mîna wan îxtilaf kirin. Îcar Hz. 'Umer (r.) wextê ev îxtilaf dît ji wan re jî got: Hûn ji min dûr bikevin. 'Ebdullahê kurê 'Ebbas (r.) dibêje: Paşê Hz. 'Umer (r.) got: Tu gazî kalê Qureyşiyan yê li vir yê ku di beriya fetha Mekkê de hîcret kirine bike bila werine bal min. Min gazî wan kir û ji wan du mirovan jî di vê derbarê de îxtilaf nekirin û gotin: Em rewa nabînin ku tu însanan vegerînî jî û tu wan bibî nav vê webayê jî. Li ser vê yekê Hz. 'Umer (r.) bi xelkê da zanîn ku: Bêguman ezê sibehê bi rêkevim, hûn jî xwe pêkbînin. Li ser vê gotinê Ebû 'Ubeydeyê kurê Cerrah (r.) got: Tu ji qedera Xwedê direvî? Hz. 'Umer (r.) jî got: Ya Ebû 'Ubeyde, xwezî xeynê te ev gotin bigota! –Hz. 'Umer nedixwest bêdiliya wî bike.– Belê, em ji qedera Xwedê direvine bal qedera Xwedê ve. Ka bifikire, eger hinek devehê te hebin, berjêrî newaleke ku du qeraxê wê hene bibin vêca qeraxek hêşînahî ye û qeraxê din jî bêweç e. Îcar eger tu wan devehan li aliyê hêşînahî biçêrînî qey ew çêrandina te ne bi qedera Xwedê ye û eger tu wana li aliyê bêweç biçêrînî ma qey ew çêrandina te jî ne bi qedera Xwedê ye. 'Ebdullahê kurê 'Ebbas (r.) dibêje: Di wê demê de 'Ebdurrehmanê kurê 'Ewf (r.) hat ku ew ji bo hinek hewceyê xwe li wir amade nebû û got: Bêguman di vî derbarî de li bal min zanînek heye ku min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye ku wiha digot: "Wextê we bihîst ku weba di cihekî de heye hûn neçine wir û wextê weba di cihekî de derê ku hûn jî li wir bin hûn ji wir jî bi rev dernekevin" Li ser vê yekê Hz. 'Umer (r.) hemdê Xwedê te'ala kir û ji wir veqetiya û dûrket. *Buxari û Muslim riwayet kirine.*

١٧٩٤ – وَعَنْ أُسَامَةَ بْنِ زَيْدٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِذَا سَمِعْتُمُ الطَّاعُونَ بِأَرْضٍ، فَلَا تَدْخُلُوهَا، وَإِذَا وَقَعَ بِأَرْضٍ، وَأَنْتُمْ فِيهَا، فَلَا تَخْرُجُوا مِنْهَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1794- Ji Usameyê kurê Zeyd (r.), ji Pêxember (s.) got: "Wextê we bihîst ku di cihekî de ta'ûn heye hûn neçine wî cihî û wextê ta'ûn di cihekî de derket, ku hûn jî li wir bin, hûn ji wî cihî dernekevin." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ التَّغْلِيظ فِي تَحْرِيم السِّحْر
## HERAMBÛNA SIHRÊ

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَمَا كَفَرَ سُلَيْمَانُ وَلَكِنَّ الشَّيَاطِينَ كَفَرُوا يُعَلِّمُونَ النَّاسَ السِّحْرَ﴾

"Suleyman bi xwe kafir nebû bû, lêbelê şeytan kafir bûbûn û xelk fêrî sihirbaziyê dikirin."[1]

١٧٩٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (اِجْتَنِبُوا السَّبْعَ الْمُوبِقَاتِ قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ وَمَا هُنَّ؟ قَالَ: الشِّرْكُ بِاللَّهِ، وَالسِّحْرُ، وَقَتْلُ النَّفْسِ الَّتِي حَرَّمَ الله إِلَّا بِالْحَقِّ، وَأَكْلُ الرِّبَا، وَأَكْلُ مَالِ الْيَتِيمِ، وَالتَّوَلِّي يَوْمَ الزحْفِ، وَقَذْفُ الْمُحْصَنَاتِ الْمُؤْمِنَاتِ الْغَافِلَاتِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1795- Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Hûn xwe biparêzin ji heft tiştên ku dibin sedemê helakê." Li ser vê yekê sehabiyan gotin: Ya Pêxemberê Xwedê, ew çi ne? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Şîrka ji Xwedê re, sihir, bi neheqî kuştina canekî ku Xwedê heram kiriye, xwarina ribayê, xwarina malê yêtîman, reva ji meydana herbê di roja herbê de û yek jî îftira zinayê li jina mu'min a paqij û ku hay tiştekî tuneye bike." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

## بَابُ النَّهي عَنِ الْمُسَافَرَو بِالْمصْحَف إِلَى بِلَاد الكُفَّار
## NEHYA JI BIRINA QUR'ANÊ BAJARÊ GAWIRAN

١٧٩٦- عَنِ اِبْنِ عُمَر ﷺ قَالَ: نَهَى رَسُولُ الله ﷺ أَنْ يُسَافَرَ بِالْقُرْآنِ إِلَى أَرْضِ الْعَدُوِّ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1796- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) nehî kiriye ku mirov bi Qur'ana pîroz rêwîtiyê bal erdê dijmin ve bike. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

1 Beqere, 2/102.

  

## بَابُ تَحْرِيمِ إِسْتِعْمَالِ إِنَاءِ الذَّهَبِ وَإِنَاءِ الفِضَّةِ
## HERAMBÛNA BIKARANÎNA FIRAXÊ ZÊR Û ZÎV

١٧٩٧- عَنْ أُمِّ سَلَمَةَ ، أَنَّ رَسُولَ اللهِ ﷺ قَالَ: (الَّذِي يَشْرَبُ فِي آنِيَةِ الْفِضَّةِ إِنَّمَا يُجَرْجِرُ فِي بَطْنِهِ نَارَ جَهَنَّمَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِمُسْلم: (إِنَّ الَّذِي يَأْكُلُ أَوْ يَشْرَبُ فِي آنِيَةِ الْفِضَّةِ وَالذَّهَبِ).

1797- Ji Ummu Seleme (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Ew kesê di firaxên zîv de vedixwe bes ew di zikê xwe de agirê cehennemê diçeliqîne.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di senedeke Muslim de: Ew kesê di firaxê zîv û yê zêr de dixwe û vedixwe.

١٧٩٨- وَعَنْ حُذَيْفَةَ  قَالَ: إِنَّ النَّبِيَّ نَهَانَا عَنِ الْحَرِيرِ، وَالدِّيبَاجِ، وَالشُّرْبِ فِي آنِيَةِ الذَّهَبِ وَالْفِضَّةِ، وَقَالَ: (هُنَّ لَهُمْ فِي الدُّنْيَا وَهِيَ لَكُمْ فِي الآخرة). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ فِي الصَّحِيحَيْنِ عَنْ حُذَيْفَةَ : سَمِعْتُ رَسُولَ اللهِ ﷺ يَقُولُ: (لَا تَلْبَسُوا الْحَرِيرَ وَلَا الدِّيبَاجَ، وَلَا تَشْرَبُوا فِي آنِيَةِ الذَّهَبِ وَالْفِضَّةِ وَلَا تَأْكُلُوا فِي صِحَافِهَا).

1798- Ji Huzeyfe (r.), got: Pêxember (s.) nehya me ji hevrîşim, etles û vexwarina di firaxê zêr û zîv de kir û wiha digot: “Evana di dunyayê de yê wan in û di axîretê de jî yê we ne.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di seneda di sehîheynê de: Ji Huzeyfe (r.), min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Hûn kincê hevrîşim û yê etles wernegirin, di firaxê zêr û zîv de venexwin û di firaxê wan de jî nexwin.”

١٧٩٩- وَعَنْ أَنَسِ بْنِ سِيْرِينَ قَالَ: كُنْتُ مَعَ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ  عِنْدَ نَفَرٍ مِنَ الْمَجُوسِ، فَجِيءَ بِفَالُوذَجٍ عَلَى إِنَاءٍ مِنْ فِضَّة، فَلَمْ يَأْكُلْهُ، فَقِيلَ لَهُ: حَوِّلْهُ، فَحَوَّلَهُ عَلَى إِنَاءٍ مِنْ خَلَنجٍ، وَجِيءَ بِهِ فَأَكَلَهُ. رَوَاهُ الْبَيْهَقِي بِإِسْنَادٍ حَسَن.

1799- Ji Enesê kurê Sirîn, got: Ez bi Enesê kurê Malik (r.) re li bal civateke Mecûsiyan bûm. Vêca falûzec[1] di firaxeke zîv de hate anîn, lê Enes

1 **Falûzec:** Şîraniyeke ji ard û hingivê çêdibe.

(r.) jê nexwar. Jê re hate gotin: Tu wê xwarinê valayî firaxeke din bike, wî jî ew xwarin vala kir di kodikekê de û ji Enes (s.) re hate anîn û Enes (r.) jî ew xwar. *Beyheqî bi senedeke hesen rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَحْرِيم لبس الرَّجُل ثَوْباً مُزَعْفَراً

## HERAMBÛNA WERGIRTINA MÊR KINCÊ KU BI ZEHFERANÊ HATIYE BOYAXKIRIN

١٨٠٠ - عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: نَهَى النَّبِيُّ ﷺ أَنْ يَتَزَعْفَرَ الرَّجُلُ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1800- Ji Enes (r.), got: Pêxember (s.) nehî kiriye ku mêr zehferanê li bedena xwe bide. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٠١ - وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ قَالَ: رَأَى النَّبِيُّ ﷺ عَلَيَّ ثَوْبَيْنِ مُعَصْفَرَيْنِ فَقَالَ: (أُمُّكَ أَمَرَتْكَ بِهَذَا؟) قُلْتُ: أَغْسِلُهُمَا؟ قَالَ: (بَلْ أَحْرِقْهُمَا).

وَفِي رِوَايَةٍ، فَقَالَ: (إِنَّ هَذِهِ مِنْ ثِيَابِ الْكُفَّارِ فَلَا تَلْبَسْهَا). رَوَاهُ مُسْلِم.

1801- Ji 'Ebdullahê kurê 'Emrê kurê 'As (r.), got: Pêxember (s.) li ser min du kincê bi zehferanê hatine boyaxkirin dît û got: "Dayika te bi wergirtina van kincan emrî te kiriye?" Min got: Ezê wan bişom. Ewî (s.) got: "Na tu wan bişewitîne."

Di senedekê de: Bêguman evên hanê ji kincên gawiran e, vêca tu wan wernegire. *Muslim rîwayet kiriye.*

## بَابُ النَّهي عَنْ صَمْت يَوْم إِلَى اللَّيْل

## NEHYA JI BÊDENGIYA TEMAMÊ ROJÊ HETA ŞEVÊ

١٨٠٢ - عَنْ عَلِيٍّ ﷺ قَالَ: حَفِظْتُ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ: (لَا يُتْمَ بَعْدَ احْتِلَامٍ، وَلَا صُمَاتَ يَوْمٍ إِلَى اللَّيْلِ). رَوَاهُ أَبُو دَاوُد بِإِسْنَادٍ حَسَنٍ.

1802- Ji 'Elî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê hifz kiriye: "Sêwîtî heta balixbûnê ye; û (bi niyeta îbadetê) bêdengiya temamê rojê heta êvarê jî nekin." *Ebû Dawûd bi senedeke hesen riwayet kiriye.*

١٨٠٣ - وَعَنْ قَيْسِ بْنِ أَبِي حَازِمٍ قَالَ: دَخَلَ أَبُو بَكْرٍ الصِّدِّيقُ ﷺ عَلَى إِمْرَأَةٍ مِنْ أَحْمَسَ يُقَالُ لَهَا: زَيْنَبُ، فَرَآهَا لَا تَتَكَلَّمُ، فَقَالَ: مَا لَهَا لَا تَتَكَلَّمُ؟ فَقَالُوا: حَجَّتْ مُصْمِتَةً، فَقَالَ لَهَا: تَكَلَّمِي فَإِنَّ هَذَا لَا يَحِلُّ، هَذَا مِنْ عَمَلِ الْجَاهِلِيَّةِ فَتَكَلَّمَتْ. رَوَاهُ البُخَارِي.

1803- Ji Qeysê kurê Ebû Hazim, got: Ebû Bekirê Siddîq (r.) çû bal jineke ji êla Ehmes ku navê wê Zeyneb bû. Ebû Bekir (r.) lê nihêrî ku ew jinik naaxive, vêca got: Çi bi wê hatiye ku ew naaxive? Gotin: Ew (bi niyeta îbadetê) bêdeng dimîne. Li ser vê yekê Ebû Bekir (r.) ji wê re got: Tu biaxive, lewra ev yeka ne helal e û eva ji kar û ‘adetê cahiliyetê ye. Êdî ew jinik jî axivî. *Buxarî rîwayet kiriye.*

## بَابُ تَحْرِيمِ إِنْتِسَابِ الإِنْسَانِ إِلَى غَيْرِ أَبِيهِ

## HERAMBÛNA NISBETA ÎNSANÊ BAL XEYNÊ BAVÊ WÎ VE

١٨٠٤ - عَنْ سَعْدِ بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (مَنِ ادَّعَى إِلَى غَيْرِ أَبِيهِ وَهُوَ يَعْلَمُ أَنَّهُ غَيْرُ أَبِيهِ، فَالْجَنَّةُ عَلَيْهِ حَرَامٌ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1804- Ji Se‘dê kurê Ebû Weqqas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye “Kî xwe nîsbetî bal xeynê bavê xwe ve bike ku bizanibe ew mirov jî ne bavê wî ye, cennet li ser wî heram e.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٠٥ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (لَا تَرْغَبُوا عَنْ آبَائِكُمْ، فَمَنْ رَغِبَ عَنْ أَبِيهِ، فَهُوَ كُفْرٌ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1805- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: “Hûn xwe ji bavê xwe dûr nexin. Kî xwe ji bavê xwe dûr bixe, miheqeq ew kirin kafirî ye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٠٦ - وَعَنْ يَزِيدَ بن شَرِيكِ بنِ طَارِقٍ قَالَ: رَأَيْتُ عَلِيّاً ﷺ عَلَى المِنْبَرِ يَخْطُبُ، فَسَمِعْتُهُ يَقُولُ: لَا وَاللَّهِ مَا عِنْدَنَا مِنْ كِتَابٍ نَقْرَؤُهُ إِلَّا كِتَابَ الله، وَمَا فِي هَذِهِ الصَّحِيفَةِ، فَنَشَرَهَا فَإِذَا فِيهَا أَسْنَانُ الإِبِلِ، وَأَشْيَاءُ مِنَ الجِرَاحَاتِ، وَفِيهَا: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (المَدِينَةُ حَرَمٌ مَا بَيْنَ عَيْرٍ إِلَى ثَوْرٍ، فَمَنْ أَحْدَثَ فِيهَا حَدَثاً، أَوْ آوَى مُحْدِثاً،

فَعَلَيْهِ لَعْنَةُ الله وَالمَلَائِكَةِ وَالنَّاسِ أَجْمَعِينَ، لَا يَقْبَلُ الله مِنْهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ صَرْفاً وَلَا عَدْلاً، ذِمَّةُ المُسْلِمِينَ وَاحِدَةٌ، يَسْعَى بِهَا أَدْنَاهُمْ، فَمَنْ أَخْفَرَ مُسْلِماً، فَعَلَيْهِ لَعْنَةُ الله وَالمَلَائِكَةِ وَالنَّاسِ أَجْمَعِينَ، لَا يَقْبَلُ الله مِنْهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ صَرْفاً وَلَا عَدْلاً، وَمَنِ ادَّعَى إِلَى غَيْرِ أَبِيهِ، أَوِ انْتَمَى إِلَى غَيْرِ مَوَالِيهِ، فَعَلَيْهِ لَعْنَةُ الله وَالمَلَائِكَةِ وَالنَّاسِ أَجْمَعِينَ، لَا يقْبَلُ الله مِنْهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ صَرْفاً وَلَا عَدْلاً). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1806- Ji Yezîdê kurê Şerîkê kurê Tariq, got: Min Hz. ‘Elî (r.) dît ku li ser mînberê xutbe dixwend û min ji wî bihîst, wiha digot: Bi sond, naxêr, li bal me, ji xeynî kitêba Xwedê û ji xeynî tiştê di vî rûpelî de, kitêbeke me tune ku em bixwînin. Vêca ew rûpel vekir di wê de salê devehê diyetê û tiştek jî behsa birîndariyê hebû. Û di wê de (ev jî hebû): Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Medîne, herema şerîf e, heremtîya wê ji navbera Çiyayê ‘Eyrê ta Çiyayê Sewrê ye. Vêca kî di heremê de tiştekî ji rê derbixe, yan jî kî yê wiha biparêze; laneta Xwedê, ya milyaketan û ya temamê însanan li ser wî be. Xwedê te‘ala roja qiyametê tobe û fidya wî kesî jî qebûl nake. Soz û emana misilmana yek e û ew soz û eman bextê misilmanan hemû ye. Vêca kî soz û emana misilmanê bişkêne; laneta Xwedê, ya milyaketa û ya temamê însanan li ser wî be. Xwedê te‘ala roja qiyametê tobe û fidya wî kesî jî qebûl nake. Kî xwe nîsbetî bal xeynê bavê xwe yan jî xeynî seyîdê xwe ve bike; laneta Xwedê, ya milyaketa û ya temamê însanan li ser wî be. Xwedê te‘ala roja qiyametê tobe û fidya wî kesî jî qebûl nake.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٠٧ - وَعَنْ أَبِي ذَرٍ ﷺ: أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (لَيْسَ مِنْ رَجُلٍ ادَّعَى لِغَيْرِ أَبِيهِ وَهُوَ يَعْلَمُهُ إِلَّا كَفَرَ، وَمَنِ ادَّعَى مَا لَيْسَ لَهُ، فَلَيْسَ مِنَّا، وَلْيَتَبَوَّأْ مَقْعَدَهُ مِنَ النَّارِ، وَمَنْ دَعَا رَجُلاً بِالْكُفْرِ، أَوْ قَالَ: عَدُوَّ اللَّهِ، وَلَيْسَ كَذلِكَ إِلَّا حَارَ عَلَيْهِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم، وَهَذَا لَفْظُ مُسْلِمٍ.

1807- Ji Ebû Zerr (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye, wiha digot: “Kî mirovê bi zanebûn xwe nîsbetî bal xeynî bavê xwe ve bike, miheqeq ew dibe kafir. Kî daxwaza tiştê ku ne yê wî ye bike ew ji me nîne û bila ew cihê xwe di cehennemê de amade bike. Kê bi kafirî gazî yekî bike yan jî bêje: Dijminê Xwedê ku ew mirov jî wisa nebe, ew gotin vedigere bal xwediyê xwe ve.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine. Eva lefzê seneda Muslim e.*

  

## بَابُ التَّحْذِير مِنْ إِرْتِكَاب مَا نَهَى الله عَزَّ وَجَلَّ أَوْ رَسُولهُ ﷺ عَنْهُ

## TEHZÎR Û TIRSANDINA JI KIRINA TIŞTÊ KU XWEDÊ (C.C.) Û PÊXEMBERÊ WÎ (S.) NEHÎ KIRINE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿فَلْيَحْذَرِ الَّذِينَ يُخَالِفُونَ عَنْ أَمْرِهِ أَنْ تُصِيبَهُمْ فِتْنَةٌ أَوْ يُصِيبَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ﴾

"Vêca ewên bi gotina Pêxember nakin, bila hişyar bin û ji xwe bitirsin ku belayek bê serê wan, yan jî 'ezabekî bi jan û dijwar li wan keve û wan bigre."[1]

﴿وَيُحَذِّرُكُمُ اللَّهُ نَفْسَهُ﴾

"Xwedê we hişyarê (ezabê) xwe dike."[2]

﴿إِنَّ بَطْشَ رَبِّكَ لَشَدِيدٌ﴾

"Bi rastî ezadana Rebbê te dijwar e."[3]

﴿وَكَذَلِكَ أَخْذُ رَبِّكَ إِذَا أَخَذَ الْقُرَى وَهِيَ ظَالِمَةٌ إِنَّ أَخْذَهُ أَلِيمٌ شَدِيدٌ﴾

"'Ezabê/girtina Rebbê te wiha ye: Wextê ew ehlê diyarekî bigre/muaxeze bike û ehlê wî diyarî jî sîtemkar bin bêguman muaxezekirina wî pir êşdar û giran e."[4]

١٨٠٨ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى يَغَارُ، وَغَيْرَةَ الله أَنْ يَأْتِيَ الْمَرْءُ مَا حَرَّمَ اللَّهُ عَلَيْهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1808- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Xwedê te'ala tê xîretê, xîreta wî ew e ku însan tiştê ku Xwedê te'ala li ser wî heram kiriye, bike." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

## بَابُ مَا يَقُولهُ وَيَفْعلهُ مَن إِرْتَكَبَ منْهِياً عَنْهُ

## GOTIN Û KIRINA WÎ KESÊ KU TIŞTEKÎ QEDEXE KIRIYE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

---

1 Nûr, 24/63.
2 Alî 'Îmran, 3/30.
3 Burûc, 85/12.
4 Hûd, 11/102.

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَإِمَّا يَنْزَغَنَّكَ مِنَ الشَّيْطَانِ نَزْغٌ فَاسْتَعِذْ بِاللَّهِ﴾

"Her wexta awazek ji şeytanî bigihêje te, tu xwe bi Xwedê biparêze."[1]

﴿إِنَّ الَّذِينَ اتَّقَوْا إِذَا مَسَّهُمْ طَائِفٌ مِنَ الشَّيْطَانِ تَذَكَّرُوا فَإِذَا هُمْ مُبْصِرُونَ﴾

"Bi rastî ewên parêzgerî kirin, her wexta ku wesweseyek ji şeytanî gihîşte wan, (fermana Xwedê) hate bîra wan. Vêca bi xwe dihesin û çavê wan ronî dibin."[2]

﴿وَالَّذِينَ إِذَا فَعَلُوا فَاحِشَةً أَوْ ظَلَمُوا أَنْفُسَهُمْ ذَكَرُوا اللَّهَ فَاسْتَغْفَرُوا لِذُنُوبِهِمْ وَمَنْ يَغْفِرُ الذُّنُوبَ إِلَّا اللَّهُ وَلَمْ يُصِرُّوا عَلَى مَا فَعَلُوا وَهُمْ يَعْلَمُونَ ۞ أُولَئِكَ جَزَاؤُهُمْ مَغْفِرَةٌ مِنْ رَبِّهِمْ وَجَنَّاتٌ تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا الأَنْهَارُ خَالِدِينَ فِيهَا وَنِعْمَ أَجْرُ الْعَامِلِينَ﴾

"Ew (parêzger), eger gunehekî dikin yan jî sîtemê li xwe dikin, navê Xwedayê xwe tînine bîra xwe û daxwaza gunehjêbirinê ji Xwedê dikin. Ma kî ji xeynê Xwedê gunehan jê dibe. Ew jî bi zanebûn israrê li ser gunehan nakin. Evan, xelatê wan jêbirina gunehan e ji aliyê Xwedayê wan ve û cennet e ku robar di bin re diherikin û diçin. Her û her yê tê de bin. Cennet çi xweş xelat e ji bo kiryarkerê qenc."[3]

﴿وَتُوبُوا إِلَى اللَّهِ جَمِيعاً أَيُّهَا الْمُؤْمِنُونَ لَعَلَّكُمْ تُفْلِحُونَ﴾.

"Gelî ewên bawerî anîne! Hûn hemû bal Xwedê ve tobe bikin, da ku rizgar bibin."[4]

١٨٠٩- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَنْ حَلَفَ فَقَالَ فِي حَلِفِهِ: بِاللَّاتِ وَالْعُزَّى، فَلْيَقُلْ: لَا إِلَهَ إِلَّا الله، وَمَنْ قَالَ لِصَاحِبِهِ: تَعَالَ أُقَامِرْكَ فَلْيَتَصَدَّقْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1809- Ji Ebû Hureyre (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Kî sond bixwe û di sonda xwe de bibêje: Bi navê Lat û 'Uzza, bila ew kes (da ku bibe kefaretê gunehê wî) bibêje: La îlahe îllellah (ji xeynî Xweda tu îlah tune). Û kî jî ji hevalê xwe re bibêje: Were, em qumarê bileyîzin, bila sedeqê bide (da ku bibe kefaretê gunehê wî)."

1 Fussîlet, 41/36.
2 E'raf, 7/201.
3 Alî 'Îmran, 3/135-136.
4 Nûr, 24/31.

# كِتَابُ الْمَنْثُورَات وَالْملح

# KITÊBA MENSÛRAT Û MULEHA

١٨١٠- عَنِ النَّوَاسِ بْنِ سَمْعَانَ ﷺ قَالَ: ذَكَرَ رَسُولُ الله ﷺ الدَّجَّالَ ذَاتَ غَدَاةٍ، فَخَفَّضَ فِيهِ، وَرَفَّعَ حَتَّى ظَنَنَّاهُ فِي طَائِفَةِ النَّخْلِ، فَلَمَّا رُحْنَا إِلَيْهِ، عَرَفَ ذَلِكَ فِينَا، فَقَالَ: (مَا شَأْنُكُمْ؟) قُلْنَا: يا رَسُولَ اللَّهِ، ذَكَرْتَ الدَّجَّالَ الْغَدَاةَ، فَخَفَّضْتَ فِيهِ وَرَفَّعْتَ، حَتَّى ظَنَنَّاه فِي طَائِفَةِ النَّخْلِ، فَقَالَ: (غَيْرُ الدَّجَّالِ أَخْوَفنِي عَلَيْكُمْ، إِنْ يَخْرُجْ وأَنَا فِيكُمْ، فَأَنَا حَجِيْجُهُ دُونكُم، وَإِنْ يَخْرُجْ وَلَسْتُ فِيكُمْ، فَامْرُؤٌ حَجِيجُ نَفْسِهِ، وَاللهُ خَلِيفَتِي عَلَى كُلِّ مُسْلِم، إِنَّهُ شَابٌّ قَطَطٌ، عَيْنُهُ طَافِيَةٌ، كَأَنِّي أُشَبِّهُهُ بِعَبْدِ الْعُزَّى بن قَطَنٍ، فَمَنْ أَدْرَكَه مِنكُمْ، فَلْيَقْرَأْ عَلَيْهِ فَوَاتحَ سُورَةِ الْكَهْفِ، إِنَّهُ خَارِجٌ خَلَّة بَيْنَ الشَّام وَالْعِرَاقِ، فَعَاثَ يَمِيناً وَعَاثَ شِمَالاً، يَا عِبَادَ الله فَاثْبُتُوا) قُلْنَا: يَا رَسُولَ الله وَمَا لُبْثُه فِي الأَرْضِ؟ قَالَ: (أَرْبَعُونَ يَوْماً: يَوْمٌ كَسَنَةٍ، وَيَوْمٌ كَشَهْرٍ، وَيَوْمٌ كَجُمُعَةٍ، وَسَائِرُ أَيَّامِهِ كَأَيَّامِكُمْ) قُلْنَا: يا رَسُولَ الله، فَذلِكَ الْيَوْمُ الذي كَسَنَةٍ أَتَكْفِينَا فِيهِ صَلَاةُ يَوْمٍ؟ قَالَ: (لَا، اقْدُرُوا لَهُ قَدْرَهُ) قُلْنَا: يَا رَسُولَ الله وَمَا إِسْرَاعُهُ فِي الأَرْضِ؟ قَالَ: (كَالْغَيْثِ اسْتَدْبَرَتْهُ الرِّيحُ، فَيَأْتِي عَلَى الْقَوْمِ، فَيَدْعُوهُم، فَيُؤْمِنُونَ بِهِ، وَيَسْتَجِيبُونَ لَهُ، فَيَأْمُرُ السَّماءَ فَتُمْطِر، والأَرْضَ فَتُنبتُ،

فَتَرُوحُ عَلَيْهِم سارِحَتُهُمْ أَطْوَلَ مَا كَانَتْ ذُرىً، وَأَسبَغَهُ ضُرُوعاً، وَأَمَدَّهُ خَوَاصِرَ، ثُمَّ يَأْتِي الْقَوْمَ فَيَدْعُوهُمْ، فَيَرُدُّونَ عَلَيْهِ قَوْلَهُ، فَيَنْصَرِفُ عَنْهُمْ، فَيُصْبِحُونَ مُمْحِلِينَ لَيْسَ بِأَيْدِيهِمْ شَيْءٌ مِنْ أَمْوَالِهِمْ، وَيَمرُّ بِالخَرِبَةِ فيَقُولُ لَهَا: أَخْرِجِي كُنُوزَكِ، فَتَتْبَعُهُ كُنُوزُهَا كَيَعَاسِيبِ النَّحْلِ، ثُمَّ يَدْعُو رَجُلاً مُمْتَلِئاً شَبَاباً فَيَضْرِبُهُ بِالسَّيْفِ، فَيَقْطَعُهُ جزْلَتَيْنِ رَمْيَةَ الْغَرَضِ، ثُمَّ يَدْعُوهُ، فَيُقْبِلُ، وَيَتَهَلَّلُ وَجْهُه، يَضْحَكُ، فَبَيْنَمَا هُوَ كَذَلِكَ إِذْ بَعَثَ اللَّهُ تَعَالَى المَسِيحَ ابْنَ مَرْيَمَ ﷺ فَيَنْزِلُ عِنْدَ المَنَارَةِ الْبَيْضَاءِ شَرْقِيَّ دِمَشْقَ بَيْنَ مَهْرُودَتَيْنِ، وَاضِعاً كَفَّيْهِ عَلَى أَجْنِحَةِ مَلَكَيْنِ، إِذَا طَأْطَأَ رَأْسَهُ، قَطَرَ، وَإِذَا رَفَعَهُ تَحَدَّرَ مِنْهُ جُمَانٌ كَاللُّؤْلُؤِ، فَلَا يَحِلُّ لِكَافِرٍ يَجِدُ رِيحَ نَفَسِه إِلَّا مَاتَ، وَنَفَسُهُ يَنْتَهِي إِلَى حَيْثُ يَنْتَهِي طَرْفُهُ، فَيَطْلُبُهُ حَتَّى يُدْرِكَهُ بِبَابِ لُدٍّ فَيَقْتُلُهُ، ثُمَّ يَأْتِي عِيسَى قَوْم قَدْ عَصَمَهُمُ اللَّهُ مِنْهُ، فَيَمْسَح عَنْ وُجُوهِهِمْ، وَيُحَدِّثُهُمْ بِدَرَجَاتِهِمْ فِي الجَنَّةِ، فَبَيْنَمَا هُوَ كَذلِكَ إِذْ أَوْحَى اللَّهُ تَعَالَى إِلَى عِيسَى ﷺ: إِنِّي قَدْ أَخْرَجْتُ عِبَاداً لِي، لَا يَدَانِ لأَحَدٍ بِقِتَالِهِمْ، فَحَرِّزْ عِبَادِي إِلَى الطُّورِ، وَيَبْعَثُ اللَّهُ يَأْجُوجَ وَمَأْجُوجَ، وَهُمْ مِنْ كُلِّ حَدَبٍ يَنْسِلُونَ، فَيَمُرُّ أَوَائِلُهُمْ عَلَى بُحَيْرَةِ طَبَرِيَّةَ فَيَشْرَبُونَ مَا فِيهَا، وَيَمُرُّ آخِرُهُمْ فيَقُولُونَ: لَقَدْ كَانَ بهَذِهِ مرَّةً ماءٌ، وَيُحْصَرُ نَبِيُّ الله عِيسَى ﷺ وَأَصْحَابُهُ، حَتَّى يَكُونَ رَأْسُ الثَّوْرِ لأَحَدِهِمْ خَيْراً مِنْ مِائَةِ دِينَارٍ لأَحَدِكُمُ الْيَوْمَ، فَيَرْغَبُ نَبِيُّ الله عِيسَى ﷺ وَأَصْحَابُهُ ﷺ إِلَى الله تَعَالَى، فَيُرْسِلُ الله تَعَالَى عَلَيْهِمُ النَّغَفَ فِي رِقَابِهِمْ، فَيُصْبِحُونَ فَرْسَى كَمَوْتِ نَفْسٍ وَاحِدَةٍ ثُمَّ يَهْبِطُ نَبِيُّ الله عِيسَى ﷺ وَأَصْحَابُهُ، ﷺ، إِلَى الأَرْضِ، فَلَا يَجِدُونَ فِي الأَرْضِ مَوْضِعَ شِبْرٍ إِلَّا مَلأَهُ زَهَمُهُمْ وَنتنُهُمْ، فَيَرْغَبُ نَبِيُّ الله عِيسَى ﷺ وَأَصْحَابُهُ ﷺ، إِلَى الله تَعَالَى، فَيُرْسِلُ الله تَعَالَى طَيْراً كَأَعْنَاقِ الْبُخْتِ، فَتَحْمِلُهُمْ، فَتَطْرَحُهُمْ حَيْثُ شَاءَ الله، ثُمَّ يُرْسِلُ الله، عَزَّ وَجَلَّ، مَطَراً لَا يُكِنُّ

  

مِنْهُ بَيْتُ مَدَرٍ وَلَا وَبَرٍ، فَيَغْسِلُ الأَرْضَ حَتَّى يَتْرُكَهَا كَالزَّلَقَةِ، ثُمَّ يُقَالُ لِلأَرْضِ: أَنْبِتِي ثَمَرَتَكِ، وَرُدِّي بَرَكَتَكِ، فَيَوْمَئِذٍ تَأْكُلُ الْعِصَابَةُ مِنَ الرُّمَّانَةِ، وَيَسْتَظِلُّونَ بِقِحْفِهَا، وَيُبَارَكُ فِي الرِّسْلِ حَتَّى إِنَّ اللِّقْحَةَ مِنَ الإِبِلِ لَتَكْفِي الْفِئَامَ مِنَ النَّاسِ، وَاللِّقْحَةَ مِنَ الْبَقَرِ لَتَكْفِي الْقَبِيلَةَ مِنَ النَّاسِ، وَاللِّقْحَةَ مِنَ الْغَنَمِ لَتَكْفِي الْفَخِذَ مِنَ النَّاسِ، فَبَيْنَمَا هُمْ كَذَلِكَ إِذْ بَعَثَ اللهُ تَعَالَى رِيحاً طَيِّبَةً، فَتَأْخُذُهُمْ تَحْتَ آبَاطِهِمْ، فَتَقْبِضُ رُوحَ كُلِّ مُؤْمِنٍ وَكُلِّ مُسْلِمٍ، وَيَبْقَى شِرَارُ النَّاسِ يَتَهَارَجُونَ فِيهَا تَهَارُجَ الْحُمُرِ فَعَلَيْهِمْ تَقُومُ السَّاعَةُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1810- Ji Newwasê kurê Sem‘an (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) sibehekê behsa deccal kir; geh piçûk dikir û geh mezin dikir heta me zen kir ku deccal di nav darên xurman de ye. Vêca wextî em çûne balê, wî ev rewşa me zanî û got: “Çi li we bûye?” Me got: Ya Pêxemberê Xwedê! Te vê sibehê behsa deccal kir û te geh ew piçûk kir û geh mezin kir heta me zen kir ku ew di nav darên xurman de ye. Îcar wî (s.) got: Di derbarê we de xerabiyê ji xeynî deccal zêdetir min ditirsîne hene. Îcar eger deccal derkeve ku ez jî di navbera we de bim ezê bi serê xwe di heqê wî de derkevim û eger ew derkeve ku ez di navbera we de nebim wî çaxî her kes stûbarê nefsa xwe ye. Ji xwe hûn emanetê Xwedê te‘ala ne. Bêguman deccal xortekî porê wî gangilok e û çavê wî jî çingdan e. Ez wî dişibihînime Ebdul-‘Uzzayê kurê Qeten. Kî ji we rastî wî were bila ayetê serê sûretê Kehf bixwîne. Deccal wê di rêyeke neqeba Şam û ‘Iraqê de derkeve û wê di aliyê rast û çepê de fesadî derxe. Ey ‘ebdê Xwedê! Hûn li ser dînê xwe bimînin.” Me got: Ya Pêxemberê Xwedê! Deccal wê çi qasî li ser erdê bimîne? Wî (s.) got: “Wê çil rojî bimîne: Rojek wekî salekê ye, rojek wekî mehekê ye, rojek wekî heftekê ye û rojên wî yên din jî wekî rojê we ne.” Me got: Ya Pêxemberê Xwedê! Di wê roja ku wekî salekê ye besî me ye ku em nimêjê rojekê bi tenê bikin? Wî (s.) got: “Naxêr, hûn bi gorî wê teqdir bikin.” Me got: Ya Pêxemberê Xwedê! Jid û leza wî di erdê de çawa ye? Wî (s.) got: “Mîna wî ewrê baranê ye ku bayê daye pey. Vêca ew (deccal) tê bal qewmekî û wan dawetê baweriya bi xwe dike, ew jî baweriyê pê tînin û dewa wî qebûl dikin. Vêca ew emrê asîmana dike baranê dibarîne û emrê erdê dike hêşînahî hêşîn dike. Vêca keriyê wan dizîvirin ku ji berê piştdirêjtir, guhanê wan bêhtir bi şîr û hê dirêjtir in. Paşê tê bal qewmekî din û wan dawetê baweriya bi xwe dike, lê ew qewm gotina wî red dikin. Vêca ew ji cem wan vedigere û ew qewm

xwedansibe dibin ku ketine xelayê û di destê wan de tiştek nemaye. Deccal ber xirbekî re derbas dibe û ji wî re dibêje: Tu defîne û gencînê xwe derxe. Û gencînê wî jî deccal teqîb dikin wekî teqîba mêşê hingiv li şahengê. Paşê deccal xortekî bi hêz û quwet dawetê baweriya bi xwe dike û bi şûr li wî xortî dixe û wî dike du qet mîna tîra ku tê avêtin bal nîşanê ve. Û paşê (sax dibe) dîsa wî xortî dawetê baweriya bi xwe dike, vêca ew xort berê xwe didê bi çehreke rûşen dikene. Ew hîna di vê demê de ye Xwedê te'ala, Mesîhê kurê Meryem (s.) dişîne. Ew (s.) di nav du kincê boyaxkirî û ku destê xwe daniye li ser baskê milyaketan, berjêrî bal Minara spî ya rojhilata Şamê dibe. Hz. Îsa wextê serê xwe berjêr dike dilopê paqij û pak jê dilop dikin û wextê serê xwe radike dilopê mîna mircanê morî morî jê dadipalin. Gawirê bêhna nefesa wî bêhn bike miheqeq wê bimre. Nefesa wî heta çav dibîne diçe. Vêca Hz. Îsa li Deccal digere û wî di "Babul-Ludd"ê de digre û wî li wê derê dikuje. Paşê Hz. Îsa tê cem qewmekî ku Xwedê te'ala ew ji fitna deccal parastine, Hz. Îsa destê xwe di ser rûyê wan re dibe û behsa derecê wan yê di cennetê de ji wan re dike. Dema ku ew di vî halî de ne Xwedê te'ala ji Hz. Îsa re wehiyê dişîne: "Bêguman min hinek 'îbad ji xwe re derxistine hêz û quweta tu kesî tune ku bi wan re şer bike vêca tu wan di çiyayê Tûrê de biparêze." Xwedê te'ala Ye'cûc û Me'cûc rê dike û ew ji her girî dirijin û tên. Koma wan ya pêşîn li ser gola Taberiyê re derbas dibin çi ava tê de heye hemû vedixwin û koma wan ya dawiyê derbas dibe û wiha dibêjin: Wextekî di vê derê de av hebû. Pêxemberê Xwedê Hz. Îsa û hevalê wî ji aliyê Ye'cûc û Me'cûc ve têne dorpêçkirin heta ku ji şiddeta dorpêçiyê serê gayekî ji bo her yek ji wan xêrtir dibe ji sed dînarê we yê îro. Vêca Pêxemberê Xwedê Hz. Îsa û hevalê wî lavahî û dua ji Xwedê te'ala dikin û Xwedê te'ala jî di patka wan de kurman musselletê li ser serê wan dike. Û di wextê sibê de ew hemû mîna yek nefsekê yekten dimrin. Paşê Pêxemberê Xwedê Hz. Îsa û hevalê wî ji çiyayê Tur berjêrî erdê dibin û di rûyê erdê de cihê bihustekê nabînin ku bêhna wan ya genî û ya xirab ew der tijî nekiribe. Dîsa Pêxemberê Xwedê Hz. Îsa û hevalê wî lavahî û dua ji Xwedê te'ala dikin û Xwedê te'ala jî teyrekî mîna stûyê hêstiran dişîne. Ew teyr jî laşên wan hildigire û davêje ciyê ku Xwedê te'ala divê. Paşê jî Xweda ('ezze we celle) baranekê dişîne ku ji wê baranê ne malên ji heriyê û ne jî kon dikarin xwe veşêrin. Ew baran wê erdê dişo heta ku wê dike wekî neynikê. Paşê wê ji erdê re bê gotin: Tu fêkiyê xwe hêşîn bike û adana xwe jî vegerîne. Vêca ewê rojê civatek bi hinarekê têr dixwe û xwe didine

ber siya qalkê wê. Û şîr wisa bi adan dibe heta ku deveheke doşanî têra civateke qelebalix dike, çêlekeke doşanî têra êleke însanan dike û pezeke doşanî jî têra komikeke însanan dike. Dema ku ew di vî halî de ne Xwedê te'ala bayekî xweş dişîne, vêca ew ba wana di binçengê wan de digre û ruhê her misilman û muminî distîne. Xerabê însanan dimînin û ew jî wekî garana keran jin û mêr dikevin nav hevdu û li ber çavê însanan li hevdu siwar dibin. Vêca qiyamet wê li ser wan rabe." *Muslim riwayet kiriye.*

١٨١١ - وَعَنْ رِبْعِيِّ بْنِ حِرَاشٍ قَالَ: انْطَلَقْتُ مَعَ أَبِي مَسْعُودٍ الأَنْصَارِيِّ إِلَى حُذَيْفَةَ بْنِ الْيَمَانِ ﷺ، فَقَالَ لَهُ أَبُو مَسْعُودٍ: حَدِّثْنِي مَا سَمِعْتَ مِنْ رَسُولِ الله ﷺ فِي الدَّجَّالِ قَالَ: (إِنَّ الدَّجَّالَ يَخْرُجُ، وَإِنَّ مَعَهُ مَاءً وَنَاراً، فَأَمَّا الَّذِي يَرَاهُ النَّاسُ مَاءً فَنَارٌ تُحْرِقُ، وَأَمَّا الَّذِي يَرَاهُ النَاسُ نَاراً، فَمَاءٌ بَارِدٌ عَذْبٌ، فَمَنْ أَدْرَكَهُ مِنكُمْ، فَلْيَقَعْ فِي الَّذِي يَرَاهُ نَاراً، فَإِنَّهُ مَاءٌ عَذْبٌ طَيِّبٌ) فَقَالَ أَبُو مَسْعُودٍ: وَأَنَا قَدْ سَمِعْتُهُ. رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1811- Ji Rib'ê kurê Hiraş, got: Ez bi Ebû Mes'ûdê Ensarî re çûme bal Huzeyfeyê kurê Yeman (r.). Vêca Ebû Mes'ûd ji wî re got: Tiştê ku te derbarê deccal de ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye tu ji min re bibêje. Huzeyfeyê kurê Yeman jî got: "Bêguman deccal wê derkeve ku bi wî re jî av û agir heye. Heçîka ewa ku însan wê bi avînî dibînin ew agirekî bi şewat e û heçîka ewa însan wê bi agirî dibînin ew jî aveke sar û şêrîn e. Vêca ji we kî bigihêje Deccal bila cih bigre di wî cihê ku bi agir dibîne. Lewra ew aveke sar û şêrîn e." Ebû Mes'ûd dibêje: Min va ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٨١٢ - وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بنِ العَاصِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (يَخْرُجُ الدَّجَّالُ فِي أُمَّتِي فَيَمْكُثُ أَرْبَعِينَ، لَا أَدْرِي أَرْبَعِينَ يَوْماً أَرْبَعِينَ شَهْراً، أَوْ أَرْبَعِينَ عَاماً، فَيَبْعَثُ الله تَعَالَى عِيسَى ابْنَ مَرْيَمَ ﷺ فَيَطْلُبُهُ فَيُهْلِكُهُ، ثُمَّ يَمْكُثُ النَّاسُ سَبْعَ سِنِينَ لَيْسَ بَيْنَ اثْنَيْنِ عَدَاوَةٌ، ثُمَّ يُرْسِلُ الله، عَزَّ وَجَلَّ، رِيحاً بَارِدَةً مِنْ قِبَلِ الشَّامِ، فَلَا يَبْقَى عَلَى وَجْهِ الأَرْضِ أَحَدٌ فِي قَلْبِهِ مِثْقَالُ ذَرَّةٍ مِنْ خَيْرٍ أَوْ إِيمَانٍ إِلَّا قَبَضَتْهُ، حَتَّى لَوْ أَنَّ أَحَدَكُمْ دَخَلَ

فِي كَبِدِ جَبَلٍ، لَدَخَلَتْهُ عَلَيْهِ حَتَّى تَقْبِضَهُ، فَيَبْقَى شِرَارُ النَّاسِ فِي خِفَّةِ الطَّيْرِ، وَأَحْلَامِ السِّبَاعِ لَا يَعْرِفُونَ مَعْرُوفاً، وَلَا يُنْكِرُونَ مُنْكَراً، فَيَتَمَثَّلُ لَهُمُ الشَّيْطَانُ، فَيَقُولُ: أَلَا تَسْتَجِيبُونَ؟ فَيَقُولُونَ: فَمَا تَأْمُرُنَا؟ فَيَأْمُرُهُمْ بِعِبَادَةِ الأَوْثَانِ، وَهُمْ فِي ذَلِك دَارٌّ رِزْقُهُمْ، حَسَنٌ عَيْشُهُمْ، ثُمَّ يُنْفَخُ فِي الصُّورِ، فَلَا يَسْمَعُهُ أَحَدٌ إِلَّا أَصْغَى لِيتاً وَرَفَعَ لِيتاً، وَأَوَّلُ مَنْ يَسْمَعُهُ رَجُلٌ يَلُوطُ حَوْضَ إِبْلِهِ فَيُصْعَقُ وَيُصْعَقُ النَّاسُ، ثُمَّ يُرْسِلُ اللَّهُ - أَوْ قَالَ: يُنْزِلُ اللَّهَ - مَطَراً كَأَنَّهُ الطَّلُّ أَوِ الظِّلُّ، فَتَنْبُتُ مِنْهُ أَجْسَادُ النَّاسِ، (ثُمَّ يُنْفَخُ فِيهِ أُخْرَى فَإِذَا هُمْ قِيَامٌ يَنْظُرُونَ)، ثُمَّ يَقَالُ: يَا أَيُّهَا النَّاسُ هَلُمَّ إِلَى رَبِّكُمْ، (وَقِفُوهُمْ إِنَّهُمْ مَسْؤُولُونَ)، ثُمَّ يُقَالُ: أَخْرِجُوا بَعْثَ النَّارِ فَيُقَالُ: مِنْ كَمْ؟ فَيُقَالُ: مِنْ كُلِّ أَلْفٍ تِسْعَمِائَةٍ وَتِسْعَةً وَتِسْعِينَ، فذلِكَ يَوْمَ يَجْعَلُ الْوِلْدَانَ شِيباً، وَذَلِكَ يَوْمَ يُكْشَفُ عَنْ سَاقٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1812- Ji ‘Ebdullahê kurê ‘Emrê kurê ‘As(r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Deccal wê di nav ummeta min de derkeve û wê çilî (Rawî dibêje: Ez nizanim ka got: Çil roj yan çil meh yan jî çil sal) bimîne. Xwedê te‘ala wê Îsayê kurê Meryemê bişîne, Hz. Îsa dê deccal bigre û bikuje. Paşê însan dê heft salan bimînin ku di neqeba du kesan de jî dijminî tune be. Paşê Xwedê te‘ala dê bayekî sar ji aliyê Şamê ve bişîne û kesê ku di qelbê wî de bi qasî zerrekê xêr yan jî îman hebe li ser rûyê erdê namîne miheqeq ew ba wê ruhê wî bistîne. Heta eger yek ji we bikeve zikê çiyakî de jî ew ba wê bikeve wê derê û ruhê wî kesî bistîne. Vêca wê di rûyê erdê de xerabê însanan bimînin ku (çûne bal xerabiyê ve) di jid û leza teyran de û xwînxwariya cinawiran de ne û qenciyê nizanin û ji xerabiyê jî men‘ nakin. Şeytanê bikeve şiklê însanan de û dê bibêje: Êdî hûn îcabeta min nakin? Ewê jî bêjin: Tu çi emrê me dikî? Şeytanê emrê wan bi perestina pûtan bike. Ew di vî exlaqê xerab de jî; rizqê wan fireh e û jîna wan xweş e. Paşê wê bê pifkirin di sûrê de û kesê dengê wê bibihîze bi qasî mîqdarê ku stûyê xwe rake û deyne wê bimre. Kesê ku pêşîn dengê boriyê dibihîze, ew mirov e ku hewza devehê xwe bi heriyê siwax dike, ew çawa deng dibîhîze dimre û însanên din jî dimrin. Paşê Xwedê te‘ala baranekê dişîne –yan jî dibarîne– ku her wekî ew xunav e yan jî sih e. Vêca bi wê baranê laşê însanan hêşîn dibe. Paşê careke din jî tê pifkirin di sûrê de û hema di wê demê de însan ji gorên xwe radibin û hi hêviya emrê Xwedê disekinin.

  

Paşê tê gotin: Gelî mirovan! Hûn ber bi Rebbê xwe werin. (Ji milyaketan re jî tê gotin:) Hûn wan bidine rawestandin, lewra ew berpirsiyar in. Paşê tê gotin: Hûn şandeyê cehennemê derxin. Vêca tê gotin: Ji çendan? Tê gotin: Ji her hezarî nehsed û nod û nehan. Vêca ew roja, rojeke wisa ye ku zaroka kal dike û ew roj, roja ku teşk dertêne holê (rastî eşkere dibe) ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨١٣- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَيْسَ مِنْ بَلَدٍ إِلَّا سَيَطَؤُهُ الدَّجَّالُ، إِلَّا مَكَّةَ وَالمَدِينَةَ، وَلَيْسَ نَقْبٌ مِنْ أَنْقَابِهَا إِلَّا عَلَيْهِ الْمَلَائِكَةُ صَافِّينَ تَحْرُسُهُمَا، فَيَنْزِلُ بِالسَّبَخَةِ، فَتَرْجُفُ المَدِينَةُ ثَلَاثَ رَجَفَاتٍ، يُخْرِجُ الله مِنْهَا كُلَّ كَافِرٍ وَمُنَافِقٍ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1813- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ji xeynî Mekke û Medînê tu bajar tune ne ku deccal pêlê neke. Çiqas rêyê Mekke û Medînê hene miheqeq milyaket li ser wan sef digrin wana diparêzin. Vêca Deccal li cihekî dêm peya dibe, Medîne sê caran diheje û Xwedê te'ala bi wê hejandinê kafir û munafiqan hemûya ji wir derdixe." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨١٤- وَعَنْهُ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (يَتْبَعُ الدَّجَّالَ مِنْ يَهُودِ أَصْبَهَانَ سَبْعُونَ أَلْفاً عَلَيْهِمُ الطَّيَالِسَةُ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1814- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ji Cihûyên Îsfehanê heftê hezar Cihû, ku li ser wan teylesan (rûpişta ku serî û sermilan dinixumîne) heye, dibine tabi'ê deccal." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨١٥- وَعَنْ أُمِّ شَرِيكٍ ﷺ، أَنَّهَا سَمِعَتْ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: (لَيَنْفِرَنَّ النَّاسُ مِنَ الدَّجَالِ فِي الجِبَالِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1815- Ji Ummu Şerîk (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewê ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye, wiha digot: "Miheqeq însan ji ber xerabiya deccal wê birevine çiyan." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨١٦- وَعَنْ عِمْرَانَ بنِ حُصَيْنٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ يَقُولُ: (مَا بَيْنَ خَلْقِ آدمَ إِلَى قِيَامِ السَّاعَةِ أَمْرٌ أَكْبَرُ مِنَ الدَّجَّالِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1816- Ji ‘Îmranê kurê Husayn (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Ji afirandîna Adem heta derketina roja qiyametê belayek ji deccal mezintir tune.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨١٧- وَعَنْ أَبِي سَعِيدِ الخُدْرِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (يَخْرُجُ الدَّجَّالُ فَيَتَوَجَّهُ قِبَلَه رَجُلٌ مِنَ المُؤْمِنِينَ فَيَتَلَقَّاهُ المَسَالِحُ: مَسَالِحُ الدَّجَّالِ، فَيَقُولُونَ لَهُ: إِلَى أَيْنَ تَعمِدُ؟ فَيَقُولُ: أَعْمِدُ إِلَى هَذَا الَّذِي خَرَجَ، فَيَقُولُونَ لَهُ: أَوَ مَا تُؤْمِنُ بِرَبِّنَا فَيَقُولُ: مَا بِرَبِّنَا خَفَاءٌ فَيَقُولُونَ: اقْتُلُوهُ، فَيَقُولُ بَعْضُهُمْ لِبَعْضٍ: أَلَيْسَ قَدْ نَهَاكُمْ رَبُّكُمْ أَنْ تَقْتُلُوا أَحداً دُونَهُ، فَيَنْطَلِقُونَ بِهِ إِلَى الدَّجَّالِ، فَإِذَا رَآهُ المُؤْمِنُ قَالَ: يَا أَيُّهَا النَّاسُ: إِنَّ هَذَا الدَّجَّالُ الَّذِي ذَكَرَ رَسُولُ الله ﷺ فَيَأْمُرُ الدَّجَّالُ بِهِ فَيُشَبَّح، فَيَقُولُ: خُذُوهُ وَشُجُّوهُ، فَيُوسَعُ ظَهْرُهُ وَبَطْنُهُ ضَرْباً، فَيَقولُ: أَوَ مَا تُؤْمِنُ بِي؟ فَيَقُولُ: أَنْتَ المَسِيحُ الْكَذَّابُ فَيؤْمَرُ بِهِ، فَيُؤْشَرُ بِالمِنْشَارِ مِنْ مَفْرِقِهِ حَتَّى يُفْرَق بَيْنَ رِجْلَيْهِ، ثُمَّ يَمْشِي الدَّجَّالُ بَيْنَ الْقِطْعَتَيْنِ، ثُمَّ يَقُولُ لَهُ: قُمْ، فَيَسْتَوِي قَائِماً، ثُمَّ يَقُولُ لَهُ: أَتُؤْمِنُ بِي؟ فيقولُ: مَا ازْدَدْتُ فِيكَ إِلَّا بَصِيرَةً، ثُمَّ يَقُولُ: يَا أَيُّهَا النَّاسُ إِنَّهُ لَا يَفْعَلُ بَعْدِي بِأَحَدٍ مِنَ النّاسِ، فَيَأْخُذُهُ الدَّجَّالُ لِيَذْبَحَهُ، فَيَجْعَلُ الله مَا بَيْنَ رَقَبَتِهِ إِلَى تَرْقُوَتِهِ نُحَاساً، فَلَا يَسْتَطِيعُ إِلَيْهِ سَبِيلا، فَيَأْخُذُ بِيَدَيْهِ وَرِجْلَيْهِ فَيَقْذِفُ بِهِ، فَيَحْسبُ النَّاسُ أَنَّمَا قَذَفَهُ إِلَى النَّارِ، وَإِنَّمَا أُلْقِيَ فِي الجَنَّةِ فَقَالَ رَسُولُ الله ﷺ: هَذَا أَعْظَمُ النَّاسِ شَهَادَةً عِنْدَ رَبِّ الْعَالَمِينَ). رَوَاهُ مُسْلِم، وَرَوَى الْبُخَارِي بَعْضهُ بِمَعْنَاهُ.

1817- Ji Ebû Se‘îdê Xudrî (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: “Deccal wê derkeve. Vêca yekî mu’min bi aliyê deccal ve wê bikeve rê, sîxur û ajanê deccal dê wî pêşwazî bikin û wê jê re bêjin: Tê herî kuderê? Ewê mu’min dê bêje: Ezê herime bal ewê ku zuhur bûye. Vêca sîxur wê bêjin: Qey te bawerî bi rebbê me (deccal) neaniye? Ewê mu’min jî bêje: Di rebbê me de rewşeke veşartî tune. Ew sîxur wê bêjin: Hûn wî bikujin. Û hinekên wan jî wê ji hinekan re bêjin: Qey rebbê we hûn men‘ nekiribû ku hûn tu kesî bêagaha wî nekujin? Vêca sîxur wî mu’minî dibine bal deccal ve û wextê ewê mu’min deccal dibîne wiha dibêje: Gelî mirovan! Bêguman ev Deccal

e yê ku Pêxemberê Xwedê (s.) behsa wî kiriye. Li ser vê yekê Deccal wê emr bida ku ew mirovê mu'min li ser zikê xwe bê dirêjkirin: Hûn wî bigrin û lê bidin. Vêca pişt û zikê wî pir têne lêdan. Deccal ji wî re dibêje: Qey tu baweriyê bi min naynî? Ew kes jî dibêje: Tu mesîhê derewîn î. Tê emrkirin û bi birekê ji jorê serê wî tê birrîn heta navbera her du piyên wî. Paşê deccal di navbera her du qetan de dimeşe û jê re dibêje: Rabe. Ew jî radibe û li ser piya radiweste. Paşê dîsa deccal dê bêje: Te bi min bawerî anî? Ew jî wê bêje: Vê kirina te bes zanebûna min ya derbarê te de zêde kir. Û paşê jî wê bêje: Gelî mirovan! Deccal piştî min êdî evê kirinê nikare bi tu kesî bike. Deccal dê wî bigre ku wî serjê bike, lê Xwedê te'ala dê misekî/paxirekî têxe navbera stû û qefela wî. Vêca deccal êdî tu rêyê nabîne ku wî bikuje. Wê bi her du dest û piyên wî bigre û wî bavêje. Însanê zen bikin ku deccal ew avête êgir, lê wê bes here cennetê." Rawî dibêje: Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ev kesa, li cem Rebbê 'alemê ji aliyê şehadetê ve mezintirê însanan e." *Muslim rîwayet kiriye û Buxarî jî qismeki evê hedîsî bi vê manayê riwayet kiriye.*

١٨١٨ - وَعَنِ الْمُغِيرَةِ بنِ شُعْبَةَ ﷺ قَالَ: مَا سَأَلَ أَحَدٌ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ عَنِ الدَّجَّالِ أَكْثَرَ مِمَّا سَأَلْتُهُ، وَإِنَّهُ قَالَ لِي: (مَا يَضُرُّكَ؟) قُلْتُ: إِنَّهُمْ يَقُولُونَ: إِنَّ مَعَهُ جَبَلَ خُبْزٍ وَنَهْرَ مَاءٍ، قَالَ: (هُوَ أَهْوَنُ عَلَى اللَّهِ مِنْ ذَلِكَ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1818- Ji Muxîreyê kurê Şu'be (r.), got: Tu kesî ji min zehftir ji Pêxemberê Xwedê (s.) pirsa deccal nekiriye û wî (s.) jî ji min re got: "Deccal zerarê nade te." Min got: Ew dibêjin: Digel deccal çiyayek nan heye û çemek jî av heye. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Deccal, li bal Xwedê te'ala ji evî karî hêsantir e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨١٩ - وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَا مِنْ نَبِيٍّ إِلَّا وَقَدْ أَنْذَرَ أُمَّتَهُ الأَعْوَرَ الْكَذَّابَ، أَلَا إِنَّهُ أَعْوَرُ، وَإِنَّ رَبَّكُمْ، عَزَّ وَجَلَّ، لَيْسَ بِأَعْوَرَ، مَكْتُوبٌ بَيْنَ عَيْنَيْهِ ك ف ر). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1819- Ji Enes (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Tu Pêxember tune ku ummeta xwe ji korê derewîn netirsandibe. Guhdar bin! ew, kor e, lê Rebbê we ('ezze we celle) ne kor e û di navbera eniya wî de "K F R" nivîsî ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٢٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَلَا أُحَدِّثُكُمْ حَدِيثاً عَنِ الدَّجَّالِ مَا حَدَّثَ بِهِ نَبِيٌّ قَوْمَهُ إِنَّهُ أَعْوَرُ، وَإِنَّهُ يَجِيءُ مَعَهُ بِمِثَالِ الجَنَّةِ والنَّارِ، فالَّتِي يَقُولُ: إِنَّهَا الجَنَّةُ، هِيَ النَّارُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1820-Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Gelo ez ji we re behsa salixek deccal bikim ku tu Pêxemberî ew salixa ji ummeta xwe re negotiye: Bêguman ew, kor e û ewê bi xwe re mînakên cennet û cehennemê bîne. Vêca ewa ku deccal dibêje: Bêguman ev cennet e, miheqeq ew agir e.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٢١- وَعَنْ اِبْنِ عُمَرَ ﵄: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ ذَكَرَ الدَّجَّالَ بَيْنَ ظَهْرَانِي النَّاسِ فَقَالَ: (إِنَّ اللَّهَ لَيْسَ بِأَعْوَرَ، أَلَا إِنَّ المَسِيحَ الدَّجَّالَ أَعْوَرُ الْعَيْنِ الْيُمْنَى، كَأَنَّ عَيْنَهُ عِنبَةٌ طَافِيَةٌ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1821- Ji Îbnu ‘Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) di nav însanan de behsa deccal kir û got: “Bêguman Xweda te‘ala nekor e, lê hûn agahdar bin Mesîh Deccal çavê wî yê rastê kor e û her wekî çavê wî tiriya pejiqî ye.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٢٢- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﵁ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (لَا تَقُومُ السَّاعَةُ حَتَّى يُقَاتِلَ المُسْلِمُونَ الْيَهُودَ، حَتَّى يَخْتَبِئَ الْيَهُودِيُّ مِنْ وَرَاءِ الحَجَرِ وَالشَّجَرِ، فَيَقُولُ الحَجَرُ وَالشَّجَرُ: يَا مُسْلِمُ هَذَا يَهُودِيّ خَلْفِي تَعَالَ فَاقْتُلْهُ، إِلَّا الْغَرْقَدَ فَإِنَّهُ مِنْ شَجَرِ الْيَهُودِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1822- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Qiyamet ranabe heta ku misilman bi Cihûyan re şer nekin. Heta Cihû xwe di paş kevir û daran de vedişêrin û kevir û dar dibêjin: Hey misilman! Evê di paş min de Cihû ye, were wî bikuje. Lê dara xerqedê wisa nîne, lewra ew dara Cihûyan e.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٢٣- وَعَنْهُ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ لا تَذْهَبُ الدُّنْيَا حَتَّى يَمُرَّ الرَّجُلُ بِالْقَبْرِ، فَيَتَمَرَّغَ عَلَيْهِ، وَيَقُولُ: يَا لَيْتَنِي مَكَانَ صَاحِبِ هَذَا الْقَبْرِ، وَلَيْسَ بِهِ

الدَّيْنُ، مَا بِهِ إِلَّا الْبَلَاءُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1823- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Ez sond dixwim bi wî Xwedayê ku nefsa min di destê qudreta wî de ye, dunya xerab nabe heta ku mirov di ber gorekê re derbas bibe, vêca xwe bigindirîne wir de û wiha bêje: Xwezî ez di cihê xwediyê vê gorê de bûma. Hem jî tu deynê wî jî tune, bes bela û qedayên dunyewî hene.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٢٤- وَعَنْهُ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (لَا تَقُومُ السَّاعَةُ حَتَّى يَحْسِرَ الْفُرَاتُ عَنْ جَبَلٍ مِنْ ذَهَبٍ يُقْتَتَلُ عَلَيْهِ، فَيُقْتَلُ مِنْ كُلِّ مِائَةٍ تِسْعَةٌ وَتِسْعُونَ، فَيَقُولُ كُلُّ رَجُلٍ مِنْهُمْ: لَعَلِّي أَنْ أَكُونَ أنا أَنْجُو)

وَفِي رِوَايَةٍ: (يُوشِكُ أَنْ يَحْسِرَ الْفُرَاتُ عَن كَنْزٍ مِنْ ذَهَبٍ، فَمَنْ حَضَرَهُ فَلا يَأْخُذْ مِنْهُ شَيْئاً). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1824- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Qiyamet ranabe heta ku çemê Firatê çiyakî zêr dernexe, vêca li ser wan zêran wê şer derkeve û ji her sed mirovî nod û neh wê bêne kuştin. Û her mirovek ji wan wê bêje: Ez hêvîdar im ku ez xelas bibim.”

Di senedekê de: Nêzîke ku çemê Firatê xezîneyeke zêr derxe û vêca kesê li wir amade be tiştekî jê hilnade. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٢٥- وَعَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (يَتْرُكُونَ الْمَدِينَةَ عَلَى خَيْرِ مَا كَانَتْ، لَا يَغْشَاهَا إِلَّا الْعَوَافِي - يُرِيدُ: عَوَافِيَ السِّبَاعِ وَالطَّيْرِ، وَآخِرُ مَنْ يُحْشَرُ رَاعِيَانِ مِنْ مُزَيْنَةَ يُرِيدَانِ الْمَدِينَةَ يَنْعِقَانِ بِغَنَمِهِمَا فَيَجِدَانِهَا وُحُوشاً، حَتَّى إِذَا بَلَغَا ثَنِيَّةَ الْوَدَاعِ خَرَّا عَلَى وُجُوهِهِمَا). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1825- Dîsa ji wî (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: “Însan wextekî nêzîkî qiyametê wê Medînê li ser vê xêr û adana wî ya hanê biterikînin û ji xeynê cinawir û teyran tu kes tê de namîne. Yên ku dawiyê wê bên heşirkirin du şivanên ji êla Muzeyne ne. Ew her du qesda Medînê dikin, ji pezê xwe re diqîrin û dibînin ku Medîne bi heywanê wehşî tijî ye. Heta wexta ku ew digihêjine Seniyyetul-Weda‘ê her du jî li ser rûyê xwe dikevin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٢٦- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الخُدْرِيِّ ﷺ، أَنَّ النَّبِيَّ قَالَ: (يَكُونُ خَلِيفَةٌ مِنْ خُلَفَائِكُمْ فِي آخِرِ الزَّمَانِ يَحْثُو المَالَ وَلا يَعُدُّهُ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1826- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Xelîfeyek ji xelîfên we di dawiya dunyayê de wê mal bêhejmar belav bike." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٢٧- وَعَنْ أَبِي مُوسَى الأَشْعَرِيِّ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (لَيَأْتِيَنَّ عَلَى النَّاسِ زَمَانٌ يَطُوفُ الرَّجُلُ فِيهِ بالصَّدَقَةِ مِنَ الذَّهَبِ، فَلَا يَجِدُ أَحَداً يَأْخُذُهَا مِنْهُ، وَيُرَى الرَّجُلُ الْوَاحِدُ يَتْبَعُهُ أَرْبَعُونَ إِمْرَأَةً يَلُذْنَ بِهِ مِنْ قِلَّةِ الرِّجَالِ وَكَثْرَةِ النِّسَاءِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1827-Ji Ebû Mûsayê Eş'arî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Wê wextekî wisa bi ser însanan de bê ku însan wê zêr sedeqe bide, lê kesekî ku ewê sedeqê hilde nabîne. Û wê bê dîtin ku çil jin dikevine pey mêrekî û ew jin ji hindikbûna mêran û zehfbûna jinan xwe dispêrine wî." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٢٨- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (اِشْتَرَى رَجُلٌ مِنْ رَجُلٍ عَقَاراً، فَوَجَدَ الَّذِي اِشْتَرَى الْعَقَارَ فِي عَقَارِهِ جَرَّةً فِيهَا ذَهَبٌ، فَقَالَ لَهُ الَّذِي اِشْتَرَى الْعَقَارَ: خُذْ ذَهَبَكَ، إِنَّمَا اِشْتَرَيْتُ مِنْكَ الأَرْضَ، وَلَمْ أَشْتَرِ الذَّهَبَ، وَقَالَ الَّذِي لَهُ الأَرْضُ: إِنَّمَا بِعْتُكَ الأَرْضَ وَمَا فِيهَا، فَتَحَاكَمَا إِلَى رَجُلٍ، فَقَالَ الَّذِي تَحَاكَمَا إِلَيْهِ: أَلَكُمَا وَلَدٌ؟ قالَ أَحَدُهُمَا: لِي غُلامٌ، وقالَ الآخَرُ: لِي جَارِيَةٌ، قالَ: أَنْكِحَا الْغُلَامَ الجَارِيَةَ وَأَنْفِقُوا عَلَى أَنْفُسِهِمَا مِنْهُ وَتَصَدَّقَا). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1828-Ji Ebû Hureyre (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Mirovekî ji yekî nekêşbarek/erdek kirî. Vêca ewî mirovê ku erd kirî di wî erdî de kuzek zêr dît û ji yê erd firotî re got: Tu zêrê xwe hilde, lewra min ji te zêr nekiriye, bes min ji te erd bi tenê kiriye. Xwediyê erdê jî dibêje: Min erd û tevî tiştê tê de firote te. Vêca ew serî li dadrêsiya mirovekî dixin û dadrês dibêje: Zarokên we hene? Yek ji wan dibêje: Kurekî min heye. Yê din jî dibêje: Ya

min jî keçek heye. Îcar dadrês dibêje: Hûn keçikê li kurik mahr bikin û wan zêran ji wan re bimezixînin û yê din jî sedeqe bidin.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٢٩- وَعَنْهُ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (كَانَتِ إِمْرَأَتَانِ مَعَهُمَا إِبْنَاهُمَا، جَاءَ الذِّئْبُ فَذَهَبَ بِإِبْنِ إِحْدَاهُمَا، فَقَالَتْ لِصَاحِبَتِهَا: إِنَّمَا ذَهَبَ بِإِبْنِكِ، وَقَالَت الأُخْرَى: إِنَّمَا ذَهَبَ بِإِبْنِكَ، فَتَحَاكَمَا إِلَى دَاوُدَ ﷺ فَقَضَى بِهِ لِلْكُبْرَى، فَخَرَجَتَا عَلَى سُلَيْمَانَ بن دَاودَ ﷺ فَأَخْبَرَتَاهُ. فَقَالَ: إِئْتُونِي بِالسِّكِّينِ أَشُقُّهُ بَيْنَهُمَا. فَقَالَتْ الصُّغْرَى: لَا تَفْعَلْ، رَحِمَكَ الله، هُوَ إِبْنُهَا، فَقَضَى بِهِ لِلصُّغْرَى). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1829- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku wî ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye ku wiha digot: “Du jinik û bi wan re du kurên wan hebûn. Vêca gur hat kurê yekê ji wan her duyan bir. Vêca jinikê ji hevala xwe re got: Gur kurê te bir. A din jî got: Gur hema kurê te bir. Vêca ew her du jinik serî li dadrêsiya Hz. Dawûd (s.) xistin û Hz. Dawûd (s.) jî zarokê mayî da jinika mezin. Û ew her du piştre çûne bal Suleymanê kurê Dawûd (s.) û ew bi evê bûyerê agahdar kirin. Hz. Suleyman (s.) got: Ka hûn ji min re kêrekê bînin û ezê wî zarokî li ber wan jêbikim û li wan par ve bikim. Vêca jinika piçûk got: Xwedê rehmê li te bike! Eman, tu wî zarokî jê nekî, ew kurê ya din e. Li ser vê yekê Hz. Suleyman (s.) zarok da ya piçûk.” *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٣٠- وَعَنْ مِرْدَاسٍ الأَسْلَمِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (يَذْهَبُ الصَّالِحُونَ الأَوَّلُ فَالأَوَّلُ، وَتَبْقَى حُثَالَةٌ كَحُثَالَةِ الشَّعِيرِ أَوْ التَّمْرِ، لا يُبَالِيهِمُ الله بَالَةً). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1830- Ji Mirdasê Eslemî (r.), got: Pêxember (s.) gotiye: “Mirovê salih wê yek bi yek herin; û mîna tilpa ceh yan jî xurma wê mirovên tilp bimînin ku Xwedê te‘ala jî tu qedr û qîmetê nade wan.” *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٨٣١- وَعَنْ رِفَاعَةَ بنِ رَافِعِ الزُّرَقِيِّ ﷺ قَالَ: جَاءَ جِبْرِيلُ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَا تَعُدُّونَ أَهْلَ بَدْرٍ فِيكُمْ؟) قَالَ: (مِنْ أَفْضَلِ الْمُسْلِمِين) أَوْ كَلِمَةً نَحْوَهَا. قَالَ: وَكَذَلِكَ مَنْ شَهِدَ بَدْراً مِنَ الْمَلَائِكَةِ. رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1831- Ji Rifa'eyê kurê Rafi'ê Zureqî (r.), got: Hz. Cebraîl hate bal Pêxember (s.) û got: Hûn di nav xwe de ehlê Bedrê çawa dihesibînin? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ji qenctirînê misilmanan." Yan jî gotineke mîna vê got. Îcar Hz. Cebraîl jî got: Di nav milyaketan de jî yên ku di herba Bedrê de amade bûne wisa nin. *Buxarî riwayet kiriye.*

١٨٣٢ - وَعَنِ ابنِ عُمَرَ ﵄ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِذَا أَنْزَلَ الله تَعَالَى بِقَوْمٍ عَذاباً أَصَابَ الْعَذَابُ مَنْ كَانَ فِيهِمْ، ثُمَّ بُعِثُوا عَلَى أَعْمَالِهِمْ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1832- Ji Îbnu 'Umer (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê Xwedê te'ala ezab ji qewmekî re bişîne, ezab li temamê kesên ku di nav wan de ne dikeve û paşê her kes li gora 'emelê xwe tê heşir kirin." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٨٣٣ - وَعَنْ جَابِرٍ ﵁ قَالَ: كَانَ جِذْعٌ يَقُومُ إِلَيْهِ النَّبِيُّ ﷺ يَعْنِي فِي الخُطْبَةِ، فَلَمَّا وُضِعَ المِنْبَر، سَمِعْنَا لِلْجِذْعِ مِثْلَ صَوْتِ الْعِشَارِ حَتَّى نَزَلَ النَّبِيُّ ﷺ فَوَضَعَ يَدَهُ عَلَيْهِ فَسَكَنَ.

وَفِي رِوَايةٍ: فَلَمَّا كَانَ يَوْمُ الجُمُعَةِ قَعَدَ النَّبِيُّ ﷺ عَلَى المِنْبَرِ، فَصَاحَتِ النَّخْلَةُ الَّتِي كَانَ يَخْطُبُ عِنْدَهَا حَتَّى كَادَتْ أَنْ تَنْشَقَّ.

وَفِي رِوَايةٍ: فَصَاحَتْ صِيَاحَ الصَّبيِّ، فَنَزَلَ النبيُّ ﷺ، حَتَّى أَخَذَهَا فَضَمَّهَا إِلَيْهِ، فَجَعَلَتْ تَئِنُّ أَنِينَ الصَّبِيِّ الَّذِي يُسَكَّتُ حَتَّى اسْتَقَرَّتْ، قَالَ: (بكَتْ عَلَى مَا كَانَتْ تَسمَعُ مِنَ الذِّكْرِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1833- Ji Cabir (r.), got: Pêxember (s.) di xutban de li ser çiqilek ji dara xurmê disekinî. Vêca wextê mînber hate danîn me ji wî çiqilî dengekî mîna dengê deveha avis bihîst. Heta ku Pêxemberê Xwedê (s.) ji mînberê berjêr bû hat destê xwe danî ser, nûka sekinî.

Di senedekê de: Roja înê Pêxemberê Xwedê (s.) wextê li ser mînberê rûdinişt ew çiqilê ku Pêxemberê Xwedê (s.) pêşiyê li ser xutbe dixwend wisa qêrîn û qêjîn dikir hindik dima ku bibûya du qet.

Di senedekê de: Ewî çiqilî wekî qêrîna zarokan dikir qêrîn, vêca Pêxember (s.) ji mînberê berjêr dibû dihat ew çiqil hemêz dikir û ew jî mîna nalîniya

zarokê ku têne haşkirin dikire nalînî heta ku haş dibû. Îcar Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ew ji bo zikrê ku bihîst giriya." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٨٣٤- وَعَنْ أَبِي ثَعْلَبَةَ الْخُشَنِيِّ جُرْثُومِ بنِ نَاشِرٍ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى فَرَضَ فَرَائِضَ فَلَا تُضَيِّعُوهَا، وَحَدَّ حُدُوداً فَلا تَعْتَدُوهَا، وَحَرَّمَ أَشْيَاءَ فَلا تَنْتَهِكُوهَا، وَسَكَتَ عَنْ أَشْيَاءَ رَحْمَةً لَكُمْ غَيْرَ نِسْيَانٍ فَلا تَبْحَثُوا عَنْهَا).

حَدِيثٌ حَسَنٌ، رَوَاهُ الدَّارَقُطْنِي وَغَيْرُهُ.

1834- Ji Ebû Sa'lebê Xuşenî Cursûmê kurê Naşir (r.), Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Beguman Xweda te'ala hinek tişt ferz kirine hûn wan zayî nekin, hinek tixub/sînor danîne hûn ji wan derbas nebin, hinek tişt heram kirine hûn wan pêpes nekin û ji hinek tiştan jî, ne ku bi bîrkirin, belkî bes ji rehma xwe, sukût kiriye, vêca hûn li pey wan negerin." *Hedîs hesen e. Dare Qutnî û xeynê wî rîwayet kirine.*

١٨٣٥- وَعَنْ عَبْدِ اللَّهِ بنِ أَبِي أَوْفى ﷺ قَالَ: غَزَوْنَا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ سَبْعَ غَزَوَاتٍ نَأْكُلُ الجَرَادَ.

وَفِي رِوَايَةٍ: نَأْكُلُ مَعَهُ الجَرَادَ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1835- Ji 'Ebdullahê kurê Ebû Ewfa (r.), got: Me digel Pêxemberê Xwedê (s.) bi dijmin re heft herb kirin û me di wan herban de kuleh/kulî dixwarin.

Di senedekê de: Û me digel wî (s.) kuleh dixwarin. *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٣٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (لا يُلْدَغُ الْمُؤْمِنُ مِنْ جُحْرٍ مَرَّتَيْنِ).

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1836- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Mêrikê bawermend du caran ji qulekê pê nayê vedan." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٣٧- وَعَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (ثَلاثَةٌ لَا يُكَلِّمُهُمُ الله يَوْمَ الْقِيَامَةِ وَلَا يَنْظُرُ إِلَيْهِمْ وَلَا يُزَكِّيهِمْ وَلَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ: رَجُلٌ عَلَى فَضْلِ مَاءٍ بِالْفَلَاةِ يَمْنَعُهُ مِنِ ابْنِ السَّبِيلِ،

وَرَجُلٌ بَايَعَ رَجُلاً، سِلْعَةً، بَعْدَ الْعَصْرِ، فَحَلَفَ بِاللَّهِ لأَخَذَهَا بِكَذَا وَكَذَا، فَصَدَّقَهُ وَهُوَ عَلَى غَيْرِ ذلِكَ، وَرَجُلٌ بَايَعَ إِمَاماً لَا يُبَايِعُهُ إِلَّا لِدُنْيَا، فَإِنْ أَعْطَاهُ مِنْهَا وَفَى، وَإِنْ لَمْ يُعْطِهِ مِنْهَا لَمْ يَفِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1837- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Sê qisim însan hene Xwedê te'ala roja qiyametê bi wan re naaxive, li wan nanihêre û wan tezkiye nake. 'Ezabekî dilsoj jî ji wan re heye: Mirovê ku di çolê de ava wî ya zêde heye, lê wê ji rêwiya men' dike; mirovê ku piştî nimêja 'esrê malekî difroşe, lê bi Xwedê sond dixwe ku wî malî bi ewqas ewqasî kirriye û kirox jî jê bawer dike, lê bi ewqasî jî nekirriye û yek jî ew mirovê ku ji bo dunyayê bî'atê dide îmam/serok û îmam eger malê dunyayê bidê wê bî'ata xwe biparêze, lê eger malê dunyayê nedê ew jî bî'ata xwe pêk nayne."
*Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٣٨- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (بَيْنَ النَّفْخَتَيْنِ أَرْبَعُونَ) قَالُوا: يَا أَبَا هُرَيْرَةَ، أَرْبَعُونَ يَوْماً؟ قَالَ: أَبيْتُ، قَالُوا: أَرْبَعُونَ سَنَةً؟ قَالَ: أَبَيْتُ، قَالُوا: أَرْبَعُونَ شَهْراً؟ قَالَ: أَبَيْتُ، (وَيَبْلَى كُلُّ شَيْءٍ مِنَ الإِنْسَانِ إِلَّا عَجْبَ ذَنَبِهِ، فِيهِ يُرَكَّبُ الْخَلْقُ، ثُمَّ يُنَزِّلُ اللَّهَ مِنَ السَمَاءِ مَاءً، فَيَنْبُتُونَ كَمَا يَنْبُتُ البَقْلُ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1838- Dîsa ji wî (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Navbera her du pifan de çil heye." Sehabiyan gotin: Ya Ebû Hureyre, çil roj? Wî (r.) got: Baş nizanim. Sehabiyan gotin: Çil sal? Ewî (r.) got: Baş nizanim. Sehabiyan gotin: Çil meh? Ewî (r.) got: Ez baş nizanim. Ji xeyne qarçikê/hestiyê boçikê temamê bedena însanî dirize û di wê de afirîn çêdibe. Paşê Xwedê te'ala ji asîmanan baranekê dibarîne û çawa ku giya hêşîn dibe însan jî wisa hêşîn dibin."
*Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٣٩- وعَنْهُ قَالَ: بَيْنَمَا النَّبِيُّ ﷺ فِي مَجْلِسٍ يُحَدِّثُ الْقَوْمَ، جَاءَهُ أَعْرَابِيٌّ فَقَالَ: مَتَى السَّاعَةُ؟ فَمضى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُحَدِّثُ، فَقَالَ بَعْضُ الْقَوْمِ: سَمِعَ مَا قَالَ، فَكَرِهَ مَا قَالَ، وَقَالَ بَعْضهُمْ: بَلْ لَمْ يَسْمَع، حَتَّى إِذَا قَضَى حَدِيثَهُ قَالَ: أَيْنَ السَّائِلُ عَنِ السَّاعَةِ؟ قَالَ: هَا أَنَا يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: (إِذَا ضُيِّعَتِ الأَمَانَةُ، فَأَنْتَظِرِ السَّاعَةَ) قَالَ: كَيْفَ إِضَاعَتُهَا؟

قَالَ: (إِذَا وُسِّدَ الأَمْرُ إِلَى غَيْرِ أَهْلِهِ فَانْتَظِرِ السَّاعَةَ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1839- Dîsa ji wî (r.), got: Dema ku Pêxember (s.) di civatekê de ji cema'etê re diaxivî miroveki bedewî hat û got: Qiyamet kengî ye? Pêxemberê Xwedê (s.) derbas bû û axaftina xwe domand. Vêca hinekan ji civatê gotin: Pêxemberê Xwedê (s.) gotina wî bihîst lê ew gotin li xweşa wî (s.) neçû û hinekan jî gotin: Herhal Pêxemberê Xwedê (s.) nebihîst. Îcar wextê Pêxemberê Xwedê (s.) axaftina xwe qedand got: "Ewê pirsiyara qiyametê dikir li kuderê ye?" Mêrikê bedewî got: Eva ez li vir im, ya Pêxemberê Xwedê (s.). Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Wextê emanet winda bûn, tu li benda qiyametê bimîne." Ewî bedewî got: Windabûna emanetê çi ye? Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Wextê kar hate spartin bal xeynê pisporê xwe ve, tu li hêviya qiyametê be." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٨٤٠- وَعَنْهُ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (يُصَلُّونَ لَكُمْ، فَإِنْ أَصَابُوا فَلَكُمْ، وَإِنْ أَخْطَؤُوا فَلَكُمْ وَعَلَيْهِمْ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1840- Dîsa ji wî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Îmam bi we nimêjê didin kirin; vêca eger dirust bikin ji we re ye û eger xelet bikin xêr ji we re ye û guneh ji wan re ye." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٨٤١- وَعَنْهُ ﷺ: (كُنْتُمْ خَيْرَ أُمَّةٍ أُخْرِجَتْ لِلنَّاسِ) قَالَ: خَيْرُ النَّاسِ لِلنَّاسِ يَأْتُونَ بِهِمْ فِي السَّلاسِلِ فِي أَعْنَاقِهِمْ حَتَّى يَدْخُلُوا فِي الإِسْلَامِ. رَوَاهُ البُخَارِي.

1841- Dîsa ji wî (r.), "Hûn (misilman), baştirînê miletan in ku ji bo xelkê hatine", got: Ji bo merivan, xêrtirînê însanan ew in ku di stûyê wan de bi zincîr tên heta ku daxilî Îslamê dibin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٨٤٢- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (عَجِبَ الله عَزَّ وَجَلَّ مِنْ قَوْمٍ يَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ فِي السَّلَاسِلِ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1842- Dîsa ji wî (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Xwedê ('ezze we celle) kêfxweş dibe bi wî qewmê ku bi zincîran diçine cennetê." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٨٤٣- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (أَحَبُّ الْبِلَادِ إِلَى الله مَسَاجِدُهَا، وَأَبْغَضُ الْبِلَادِ إِلَى الله أَسْوَاقُهَا) رَوَاهُ مُسْلِم.

1843- Dîsa ji wî (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Di bajaran de; cihê herî hezkirî li bal Xwedê ve mizgeft in û cihê kerîhtir jî sûk in." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٤٤- وَعَنْ سَلْمَانَ الْفَارِسِيِّ ﷺ مِنْ قَوْلِهِ قَالَ: لَا تكُونَنَّ إِنِ اسْتَطَعْتَ أَوَّلَ مَنْ يَدْخُلُ السُّوقَ، وَلَا آخِرَ مَنْ يَخْرُجُ مِنْهَا، فَإِنَّهَا مَعْرَكَةُ الشَّيْطَانِ، وَبِهَا يَنْصُبُ رَايَتَهُ. رَوَاهُ مُسْلِمٌ. وَرَوَاهُ البَرْقَانِيُّ فِي صَحِيحِهِ عَنْ سَلْمَانَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (لَا تكُنْ أَوَّلَ مَنْ يَدْخُلُ السُّوقَ، وَلَا آخِرَ مَنْ يَخْرُجُ مِنْهَا، فِيهَا بَاضَ الشَّيْطَانُ وَفَرَّخَ)

1844- Ji Selmanê Farisî (r.), ji gotina wî ku gotiye: Eger tu bikaribî, nebe ewilê kesê ku diçine sûkan û dawînê kesê ku ji sûkan dertên. Lewra sûk meydana şerê şeytan e û şeytan alaya xwe li wir diçikîne. *Muslim wiha rîwayet kiriye.*

Berqanî di sehîha xwe de ji Selman rîwayet kiriye ku wî wiha gotiye: "Tu nebe ewilê kesê ku diçine sûkan û dawînê kesê ku ji sûkan dertên. Lewra şeytan li wir hêk dike û dizê."

١٨٤٥- وَعَنْ عَاصِمٍ الأَحْوَلِ، عَنْ عَبْدِ الله بْنِ سَرْجِسَ ﷺ قَالَ: قُلْتُ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ: يَا رَسُولَ الله غفَرَ اللَّهُ لَكَ، قَالَ: (وَلَكَ) قَالَ عَاصِمٌ: فَقلْتُ لَهُ: اسْتَغْفَرَ لَكَ رَسُولُ الله؟ قَالَ: (نَعَمْ وَلَكَ) ثُمَّ تَلَا هذِهِ الآيَةَ: (وَاسْتَغْفِرْ لِذَنْبِكَ، وَلِلْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ -مُحَمَّدْ ١٩). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1845- Ji 'Asimê Ehwel, ji 'Ebdullahê kurê Sercis (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) re got: Ya Pêxemberê Xwedê! Xwedê te bibexşîne. Wî (s.) got: Te jî. 'Asim dibêje: Min ji 'Ebdullahê kurê Sercis re got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji te re daxwaza bexşandinê kir? Wî (r.) got: Belê, ji te re jî daxwaza bexşandinê kir û paşê ev ayet xwend: "Tu ji gunehê xwe û ji gunehê mêrên bawermend û jinên bawermend daxwaza bexşandinê bike." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٤٦- وَعَنْ أَبِي مَسْعُودٍ الأَنْصَارِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (إِنَّ مِمَّا أَدْرَكَ النَّاسُ مِنْ كَلَامِ النُّبُوَّةِ الأُولَى: إِذَا لَمْ تَسْتَحِ فَاصْنَعْ مَا شِئْتَ). رَوَاهُ البُخَارِي.

1846- Ji Ebû Mes'ûdê Ensarî (r.), got: Pêxember (s.) gotiye: "Bêguman

  

ji Pêxemberê yekem heta niha gotina ku di bîra însanan de maye ev e: Wextê tu şerm nekî êdî çi dixwazî bike." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٨٤٧- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (أَوَّلُ مَا يُقْضَى بَيْنَ النَّاسِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ فِي الدِّمَاءِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1847- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxember (s.) gotiye: "Roja qiyametê ewilê tiştê ku tê çareserkirin xwîndarî ye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٤٨- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ، قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (خُلِقَتِ المَلَائِكَةُ مِنْ نُورٍ، وَخُلِقَ الجَانُّ مِنْ مَارِجٍ مِنْ نَارٍ، وَخُلِقَ آدَمُ مِمَّا وُصِفَ لَكُمْ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1848- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Milyaket ji nûrê, cin ji agirê bêdû û Adem jî ji wî tiştê ku (di Qur'anê de) ji we re hatiye wesfkirin hatine afirandin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٤٩- وَعَنْهَا ﷺ قَالَتْ: كَانَ خُلُقُ نَبِيِّ الله ﷺ الْقُرْآنَ. رَوَاهُ مُسْلِم.

1849- Dîsa ji wê (r.), got: Exlaqê Pêxemberê Xwedê (s.) Qur'an bû. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٥٠- وَعَنْهَا قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (مَنْ أَحَبَّ لِقَاءَ الله أَحَبَّ الله لِقَاءهُ، وَمَنْ كَرِهَ لِقَاءَ الله كَرِهَ الله لِقَاءهُ) فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ الله، أَكَرَاهِيَةُ المَوْتِ؟ فَكُلُّنَا نَكْرَهُ المَوْتَ قَالَ: (لَيْسَ كَذلِكَ، وَلكِنَّ الْمُؤْمِنَ إِذَا بُشِّرَ بِرَحْمَةِ اللَّهِ وَرِضْوَانِهِ وَجَنَّتِهِ أَحَبَّ لِقَاءَ الله، فَأَحَبَّ الله لِقَاءهُ، وَإِنَّ الْكَافِرَ إِذَا بُشِّرَ بِعَذَابِ اللَّهِ وَسَخَطِهِ، كَرِهَ لِقَاءَ الله، وَكَرِهَ الله لِقَاءهُ) رَوَاهُ مُسْلِم.

1850- Dîsa ji wê (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî hez ji gihîştina Xwedê te'ala bike Xwedê te'ala jî hez ji gihîştina wî dike û kî ji gihîştina Xwedê te'ala bikerihe Xwedê te'ala jî ji gihîştina wî dikerihe." Hz. 'Aîşe (r.) dibêje: Min got: Ya Pêxemberê Xwedê! Lê kerihandina mirinê? Em hemû ji mirinê dikerihin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: Wisa nîne. Bes mêrikê bawermend wextê bi rehmet, razîbûn û cenneta Xwedê te'ala tê mizgînîkirin

hez dike bigihêje Xwedê û Xwedê jî hez dike bigihêje wî. Lê mêrikê gawir wextê bi ezab û xeyda Xwedê tê mizgînîkirin hez nake bigihêje Xwedê û Xwedê jî hez nake bigihêje wî." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٥١- وَعَنْ أُمِّ المُؤْمِنِينَ صَفِيَّةَ بِنْتِ حُيَي ﵂ قَالَتْ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ مُعْتَكِفاً، فَأَتَيْتُهُ أَزُورُهُ لَيْلاً، فَحَدَّثْتُهُ ثُمَّ قُمْتُ لأَنْقَلِبَ، فَقَامَ مَعِي لِيَقْلِبَنِي، فَمَرَّ رَجُلَانِ مِنَ الأَنْصَارِ ﵄ فَلَمَّا رَأَيَا النَّبِيَّ ﷺ أَسْرَعَا، فَقَالَ ﷺ: (عَلَى رِسْلِكُمَا إِنَّهَا صَفِيَّةُ بِنْتُ حُيَيٍّ) فَقَالَا: سُبْحَانَ اللهِ يَا رَسُولَ اللهِ! فَقَالَ: (إِنَّ الشَّيْطَانَ يَجْرِي مِنْ ابْنِ آدَمَ مَجْرَى الدَّمِ، وَإِنِّي خَشِيتُ أَنْ يَقْذِفَ فِي قُلُوبِكُمَا شَرّاً -أَوْ قَالَ- شَيْئاً). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1851- Ji dayika mu'minan Sefiya keça Huyeyy (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) di î'tikafê de bû, ez jî bi şev çûme ziyareta wî û min digel wî (s.) xeber da. Paşê ez rabûm ku ez bizîvirme malê, ew (s.) jî bi min re rabû ku min derbas bike. Vêca du mirovê Ensarî (r.) derbas bûn û wextê wan Pêxemberê Xwedê (s.) dîtin lezandin. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Hêdî bin! Eva Sefiyya keça Huyeyy e." Ewan her dukan gotin: Subhanellah, ya Pêxemberê Xwedê! Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Şeytan wekî xûnê di bedena însan de digere û ez tirsiyam ku şeytan xerabiyekê –yan jî tiştekî– bavêje qelbê we." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٥٢- وَعَنْ أَبِي الفَضْلِ العَبَّاسِ بْنِ عَبْدِ المُطَّلِبِ ﵁ قَالَ: شَهِدْتُ مَعَ رَسُولِ اللهِ ﷺ يَوْمَ حُنَيْنٍ فَلَزِمْتُ أَنَا وَأَبُو سُفْيَانَ بنُ الحَارِثِ بن عَبْدِ المُطَّلِبِ رَسُولَ اللهِ ﷺ فَلَمْ نُفَارِقْهُ وَرَسُولُ اللهِ ﷺ عَلَى بَغْلَةٍ لَهُ بَيْضَاءَ، فَلَمَّا إلْتَقَى المُسْلِمُونَ وَالمُشْرِكُونَ وَلَّى المُسْلِمُونَ مُدْبِرِينَ، فَطَفِقَ رَسُولُ اللهِ ﷺ يَرْكُضُ بَغْلَتَهُ قِبَلَ الْكُفَّارِ، وَأَنَا آخَذٌ بِلِجَامِ بَغْلَةِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَكُفُّهَا إِرَادَةَ أَنْ لَا تُسْرِعَ، وَأَبُو سُفْيَانَ آخِذٌ بِرِكَابِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَيْ عَبَّاسُ نَادِ أَصْحَابَ السَّمُرَةِ) قَالَ العَبَّاسُ، وَكَانَ رَجُلاً صَيتاً: فَقُلْتُ بِأَعْلَى صَوْتِي: أَيْنَ أَصْحَابُ السَّمُرَةِ، فَوَاللَّهِ لَكَأَنَّ عَطْفَتَهُمْ حِينَ سَمِعُوا صَوْتِي عَطْفَةُ

  

الْبَقَرِ عَلَى أَوْلَادِها، فَقَالُوا: يَا لَبَيْكَ يَا لَبَّيْكَ، فَاقْتَتَلُوا هُمْ وَالْكُفَّارُ، وَالدَّعْوَةُ فِي الأَنْصَارِ يَقُولُونَ: يَا مَعْشَرَ الأَنْصَارِ، يَا مَعْشَرَ الأَنْصَارِ، ثُمَّ قُصِرَتِ الدَّعْوَةُ عَلَى بَنِي الْحَارِثِ بنِ الْخَزْرَجِ فَنَظَرَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَهُوَ عَلَى بَغْلَتِهِ كَالْمُتَطَاوِلِ عَلَيْهَا إِلَى قِتَالِهِمْ، فَقَالَ: (هذَا حِينَ حَمِيَ الْوَطِيسُ) ثُمَّ أَخَذَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ حَصيَاتٍ، فَرَمَى بِهِنَّ وجُوهَ الْكُفَّارِ، ثُمَّ قَالَ: (انْهَزَمُوا وَرَبِّ مُحَمَّدٍ) فَذَهَبْتُ أَنْظُرُ فَإِذَا الْقِتَالُ عَلَى هَيْئَتِهِ فِيمَا أَرَى، فَوَاللَّهِ مَا هُوَ إِلَّا أَنْ رَمَاهُمْ بِحَصَيَاتِهِ، فَمَا زِلْتُ أَرَى حَدَّهُمْ كَلِيلاً، وَأَمْرَهُمْ مُدْبِراً. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1852- Ji Ebû Fedl ‘Ebbasê kurê ‘Ebdulmuttelib (r.), got: Ez digel Pêxemberê Xwedê (s.) roja Huneynê amade bûm. Ez û Ebû Sufyanê kurê Harisê kurê ‘Ebdulmuttelib em mulazimê Pêxemberê Xwedê (s.) bûn û em ji wî (s.) neqetiyan. Pêxemberê Xwedê (s.) jî li ser hêstira xwe ya spî bû. Wextê misilman û muşrik ketine pêşberî hevdu misilmanan sebat nekirin û ji herbê reviyan. Li ser vê yekê Pêxemberê Xwedê (s.) bi hêstira (dûldûl) xwe bi aliyê gawiran ve ajot, vêca min gema hêstira Pêxemberê Xwedê (s.) girt ku hêstir nelezîne û Ebû Sufyan jî bi zengûyê wê girtibû. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "‘Ebbas! Tu gazî Eshabê Semurê (ehlê Bey‘tur-Ridwanê) bike." ‘Ebbas –ku mirovekî dengê wî gurr bû– dibêje: Min bi dengê xwe yê herî bilind gazî kir: Eshabê Semurê li kuderê ne? Bi sond, wextê wana dengê min bihîstin mîna mêla çêlekê li ser golika xwe ve wan jî mêl dan bal me ve (bi lez vegeriyan û li dora Pêxemberê Xwedê -s.- berhev bûn) û gotin: ‘Lebbeyk, lebbeyk û wan û gawiran şer kirin. Gazîkirin vegeriyan bal ensaran ve, digotin: Hey cema‘eta ensariyan, hey cema‘eta ensariyan! Paşê gazî kirin li ser êla Benu Harisê kurê Xezrec sekinî. Di vê demê de Pêxemberê Xwedê (s.) li ser hêstira xwe bû û wekî ku xwe li ser hêstirê dirêj bike sekinî bû li şer nihêrî. Vêca got: Eva wextê dijwarbûna şer e." Paşê Pêxemberê Xwedê (s.) hinek zixur xistin destê xwe de û avêtine ser çavê kafiran. Û paşê got: "Ez bi Rebbê Muhemmed kim, ew mexlûb bûn." Rawî dibêje: Ez çûm, min lê nihêrî min dît ku herb min çawa dîtibû wisa berdewam dike. Lê bi sond, wextê Pêxemberê Xwedê (s.) zixur avêtine wan min her dît hêza wan sist bû û karê wan jî paşve çû. *Muslim riwayet kiriye.*

١٨٥٣ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (أَيُّهَا النَّاسُ إِنَّ اللَّهَ طَيِّبٌ لَا يَقْبَلُ

إِلَّا طَيِّباً، وَإِنَّ اللَّهَ أَمَرَ الْمُؤْمِنِينَ بِمَا أَمَرَ بِهِ الْمُرْسَلِينَ، فَقَالَ تَعَالَى: (يَا أَيُّهَا الرُّسُلُ كُلُوا مِنَ الطَّيِّبَاتِ وَاعْمَلُوا صَالِحاً)-الْمُؤْمِنُونَ٥١ وَقَالَ تَعَالَى: (يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا كُلُوا مِنْ طَيِّبَاتِ مَا رَزَقْنَاكُمْ)-الْبَقَرَةُ١٧٢ ثُمَّ ذَكَرَ: الرَّجُلَ يُطِيلُ السَّفَرَ أَشْعَثَ أَغْبَرَ يَمُدُّ يَدَيْهِ إِلَى السَّمَاءِ: يَا رَبِّ يَا رَبِّ، وَمَطْعَمُهُ حَرَامٌ، وَمَشْرَبُهُ حَرَامٌ، وَمَلْبَسُهُ حَرَامٌ، وَغُذِيَ بِالْحَرَامِ، فَأَنَّى يُسْتَجَابُ لِذَلِكَ) رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1853- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Gelî însanan! Bêguman Xweda te‘ala paqij e û bes paqijiyê qebûl dike. Û bêguman Xweda te‘ala çi emrê pêxemberan kiriye, ew yeka emrê mu’minan jî kiriye. Xwedayê te‘ala gotiye: “Gelî pêxemberan! Ji pak û paqijê helal bixwin û kar û kiryarê baş bikin.” Dîsa Xwedayê te‘ala gotiye: “Gelî bawermendan! Ji wî helalê ku me bi rizq daye we bixwin.” Paşê wî (s.) zikir kir: Mirovekî ku rêwîtiyeke dirêj kiriye û porê wî gevzolî û bi xubar e destê xwe bilindî asîmanan dike: Ya Rebbî, Rebî! dibêje, lê xwarina wî heram e, vexwarina wî heram e, kincê wî heram e û bi heramê hatiye xwedî kirin, wê çawa duayê wî mirovî qebûl bibe?” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٥٤- وَعَنْهُ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (ثَلَاثَةٌ لَا يُكَلِّمُهُمُ الله يَوْمَ الْقِيَامَةِ، وَلَا يُزَكِّيهِمْ، وَلَا يَنْظُرُ إِلَيْهِمْ، وَلَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ: شَيْخٌ زَانٍ، وَمَلِكٌ كَذَّابٌ، وَعَائِلٌ مُستكْبِرٌ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1854- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Sê qisim însan hene Xwedê te‘ala roja qiyametê bi wan re naaxive, wan tezkiye nake û li wan nanihêre. ‘ezabekî dilsoj jî ji wan re heye: Kalê zinaker, serwerê derewîn û feqîrê qurre.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٥٥- وَعَنْهُ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (سَيْحَانُ وَجَيْحَانُ وَالْفُرَاتُ وَالنِّيلُ كُلٌّ مِنْ أَنْهَارِ الْجَنَّةِ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1855- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Seyhan, Ceyhan, Firat û Nîl temamê vana ji çemên cennetê ne.” *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٥٦- وَعَنْهُ قَالَ: أَخَذَ رَسُولُ الله ﷺ بِيَدِي فَقَالَ: (خَلَقَ الله التُّرْبَةَ يَوْمَ السَّبْتِ، وَخَلَقَ فِيهَا الْجِبَالَ يَوْمَ الأَحَدِ، وَخَلَقَ الشَّجَرَ يَوْمَ الاثْنَيْنِ، وَخَلَقَ المَكْرُوهَ يَوْمَ الثَّلاثَاءِ، وَخَلَقَ النُّورَ يَوْمَ الأَرْبعَاءِ، وَبَثَّ فِيهَا الدَّوَابَّ يَوْمَ الخَمِيسِ، وَخَلَقَ آدَمَ ﷺ بَعْدَ الْعَصْرِ مِنْ يَوْمِ الجُمُعَةِ فِي آخِرِ الْخَلْقِ فِي آخِرِ سَاعَةٍ مِنَ النَّهَارِ فِيمَا بَيْنَ الْعَصْرِ إِلَى اللَّيْلِ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1856- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) bi destê min girt û got: "Xwedê te'ala ax roja şemiyê, çiyan di erdê de roja yekşemê, dar roja duşemê, tiştê mekrûh roja sêşemê, nûr roja çarşemê afirandiye, heywan jî roja pêncşemê di wê de belav kiriye, Hz. Adem (e.) jî roja înê piştî berêvarê di dûmayîka afirandinê di dawiya demekê ji rojê di navbera berêvarê heta şevê afirandiye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٥٧- وَعَنْ أَبِي سُلَيْمَانَ خَالِدِ بْنِ الْوَلِيدِ ﷺ قَالَ: لَقَدِ انْقَطَعَتْ فِي يَدِي يَوْمَ مُؤْتَةَ تِسْعَةُ أَسْيَافٍ، فَمَا بقِيَ فِي يَدِي إِلَّا صَفِيحَةٌ يَمَانِيَّةٌ. رَوَاهُ البُخَارِي.

1857- Ji Ebû Suleyman Xalidê kurê Welîd (r.), got: Di roja herba Mûteyê de di destê min de neh şûr şikestin û ji xeynî şûrekî Yemenî yê di destê min de tu şûr neman. *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٨٥٨- وَعَنْ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (إِذَا حَكَمَ الْحَاكِمُ، فَاجْتَهَدَ، ثُمَّ أَصَابَ، فَلَهُ أَجْرَانِ، وَ إِنْ حَكَمَ وَاجْتَهَدَ، فَأَخْطَأَ، فَلَهُ أَجْرٌ) رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1858- Ji 'Emrê kurê 'As (r.) hatiye rîwayetkirin ku ewî ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîstiye ku wiha digot: "Wextê dadrês/hakim dê hukum bide vêca îctihad bike eger îsabet kiribe jê re du xêr hene û eger wextê hukum bide îctihad bike lê xeletî bike wî çaxî jî jê re xêrek heye." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٥٩- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ، أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (الْحُمَّى مِنْ فَيْحِ جَهَنَّمَ فَأَبْرِدُوهَا بِالْمَاءِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1859- Ji 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Ta (humma) ji germaya cehennemê ye, vêca hûn wê bi avê hênik bikin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٦٠ - وَعَنْهَا ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (مَنْ مَاتَ وَعَلَيْهِ صَوْمٌ، صَامَ عَنْهُ وَلِيُّهُ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1860- Dîsa ji wê (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Kî bimre û deynê rojiyê li ser hebe, bila weliyê wî ji pêş wî ve rojiyê bigre." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٦١ - وَعَنْ عَوْفِ بْنِ مَالِكِ بْنِ الطُّفَيْلِ: أَنَّ عَائِشَةَ ﷺ حدثَتْ أَنَّ عَبْدَ الله بْنَ الزُّبَيْرِ ﷺ قَالَ فِي بَيْعٍ أَوْ عَطَاءٍ أَعْطَتْهُ عَائِشَةَ ﷺ: وَاللَّهِ لَتَنْتَهِيَنَّ عَائِشَةَ، أَوْ لأَحْجُرَنَّ عَلَيْهَا، قَالَتْ: أَهُوَ قَالَ هَذَا؟ قَالُوا: نَعَمْ، قَالَتْ: هُوَ لِلَّهِ عَلَيَّ نَذْرٌ أَنْ لَا أُكَلِّمَ ابْنَ الزُّبَيْرِ أَبداً، فَاسْتَشْفَعَ ابْنُ الزُّبَيْرِ إِلَيْهَا حِينَ طَالَتِ الْهِجْرَةُ، فَقَالَتْ: لَا وَاللَّهِ لَا أُشَفِّعُ فِيهِ أَبَداً، وَلَا أَتَحَنَّثُ إِلَى نَذْرِي، فَلَمَّا طَالَ ذَلِكَ عَلَى ابْنِ الزُّبَيْرِ كَلَّمَ المِسْوَرَ بْنَ مَخْرَمَةَ، وَعَبْدَ الرَّحْمَن بْنَ الأَسْوَد بْنِ عَبْد يَغُوثَ وَقَالَ لَهُمَا: أَنْشُدُكُمَا الله لَمَا أَدْخَلْتُمَانِي عَلَى عَائِشَةَ ﷺ، فَإِنَّهَا لَا يَحِلُّ لَهَا أَنْ تَنذِرَ قَطِيعَتِي، فَأَقْبَلَ بِهِ المِسْوَرُ، وَعَبْدُ الرَّحْمنِ حَتَّى اسْتَأْذَنَا عَلَى عَائِشَةَ، فَقَالَا: السَّلَامُ عَلَيْكِ وَرَحْمَةُ الله وَبَرَكَاتُهُ، أَنَدْخُلُ، قَالَتْ عَائِشَةَ: ادْخُلُوا، قَالُوا: كُلُّنَا؟ قَالَتْ: نَعَمْ ادْخُلُوا كُلُّكُمْ، وَلَا تَعْلَمُ أَنَّ مَعَهُمَا ابْنَ الزُّبَيْرِ، فَلَمَّا دَخَلُوا، دَخَلَ ابْنُ الزُّبَيْرِ الْحِجَابَ، فَاعْتَنَقَ عَائِشَةَ ﷺ، وَطَفِقَ يُنَاشِدُهَا وَيَبْكِي، وَطَفِقَ المِسْوَرُ، وَعَبْدُ الرَّحْمنِ يُنَاشِدَانِهَا إِلَّا كَلَّمَتْهُ وَقَبِلَتْ مِنْهُ، ويَقُولَانِ: إِنَّ النَّبِيَّ ﷺ نَهَى عَمَّا قَدْ عَلِمْتِ مِنَ الْهِجْرَةِ، وَلَا يَحِلُّ لِمُسْلِمٍ أَنْ يَهْجُرَ أَخَاهُ فَوْقَ ثَلَاثِ لَيَالٍ، فَلَمَّا أَكْثَرُوا عَلَى عَائِشَةَ مِنَ التَّذْكِرَةِ وَالتَّحْرِيجِ، طَفِقَتْ تُذَكِّرُهُمَا وَتَبْكِي، وَتَقُولُ: إِنِّي نَذَرْتُ، وَالنَّذْرُ شَدِيدٌ، فَلَمْ يَزَالَا بِهَا حَتَّى كَلَّمَتِ ابْنَ الزُّبَيْرِ، وَأَعْتَقَتْ فِي نَذْرِهَا ذَلِكَ أَرْبَعِينَ رَقَبَةً، وَكَانَتْ تَذْكُرُ نَذْرَهَا بَعْدَ ذَلِكَ فَتَبْكِي حَتَّى تبلَّ دُمُوعُهَا خِمَارَهَا. رَوَاهُ البُخَارِي.

1861- Ji 'Ewfê kurê Malikê kurê Tufeyl hatiye rîwayetkirin ku ji Hz. 'Aîşe (r.) re hate gotin: 'Ebdullahê kurê Zubeyr (r.) di derbarê kirrîn-firotinekê de yan jî dayineke ku Hz. 'Aîşe daye de got: Bi sond, Hz. 'Aîşe (r.) yan wê dev ji vê berde yan jî ezê 'elaqa xwe jê bibirim. Hz. 'Aîşe (r.) got: Ev gotina hanê wî got? Gotin: Belê. Li ser vê yekê wê got: Ji bo Xwedê li ser min nezir

be ku ez bi 'Ebdullahê kurê Zubeyr re heta mirinê tu car neaxivim. Vêca wextê xeyd dirêj bû 'Ebdullahê kurê Zubeyr (r.) daxwaza mehderê kir (ku xaltîka wî Hz. 'Aîşe wî bibexşîne). Lê Hz. 'Aîşe (r.) got: Naxêr, bi sond, ez heta mirinê tu car mehderê di derbarê wî de qebûl nakim û ez nezra xwe jî naşkînim. Wextê ev rewş li ser 'Ebdullahê kurê Zubeyr (r.) dirêj bû, wî bi Miswerê kurê Mexreme û 'Ebdurrehmanê kurê Eswedê kurê 'Ebdu Yexûs re axivî û ji wan her duyan re got: Hûn bi xatirê Xwedê te'ala kin hûn min bibine bal Hz. 'Aîşeyê, lewra xeyda wêya ji min jê re helal nîne. Vêca Miswer û 'Ebdurrehman, bi 'Ebdullahê kurê Zubeyr re çûn heta ku gihîştine mala Hz. 'Aîşeyê û destûr jê xwestin û gotin: Esselamu 'eleykî we rehmetullahî we berekatuhû, em dikarin bêne hundir? Hz. 'Aîşe (r.) got: Werin. Ewan gotin: Em hemû? Ewê (r.) got: Belê. Hûn hemû werin. Hz. 'Aîşe (r.) nizanîbû 'Ebdullahê kurê Zubeyr jî digel wan e. Wextê ew ketine malê 'Ebdullahê kurê Zubeyr jî kete mal û destê xwe di stûyê xaltîka xwe Hz. 'Aîşe re bir, ew (r.) bi Xwedê da sondê û giriya. Miswer û 'Ebdurrehman jî ew (r.) dane sondê ku bi 'Ebdullah re biaxive û mehdera wî qebûl bike. Wan her duyan gotin: Tu jî dizanî ku Pêxember (s.) xeyd nehî kiriye û ji misilman re jî helal nîne ku ji birayê xwe ji sê rojan zêdetir bixeyd bimîne. Vêca wextê wanan li ser Hz. 'Aîşeyê herambûna birrîna sileya rehmê dirêj kirin û pir israr kirin Hz. 'Aîşeyê jî nezra xwe bi bîra wan xist, giriya û got: Min jî nezir kiriye û nezir jî zêde guneh e. Lê wan her dukan israra xwe berdewam kirin heta ku Hz. 'Aîşe bi 'Ebdullahê kurê Zubeyr re axivî. Hz. 'Aîşe (r.) ji bo vê nezra xwe çil kole azad kir û piştî vê jî wextê wê (r.) ev nezra bi bîr dianî digiriya heta ku hêstirên wê laçika wê şil dikir. *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٨٦٢ - وَعَنْ عُقْبَةَ بْنِ عَامِرٍ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ خَرَجَ إِلَى قَتْلَى أُحدٍ، فَصَلَّى عَلَيْهِمْ بَعْدَ ثَمَانِ سِنِينَ كَالمُوَدِّعِ لِلْأَحْيَاءِ وَالأَمْوَاتِ، ثُمَّ طَلَعَ إِلَى الْمِنْبَرِ، فَقَالَ: (إِنِّي بَيْنَ أَيْدِيكُمْ فَرَطٌ وَأَنا شَهِيدٌ عَلَيْكُمْ، وَإِنَّ مَوْعِدَكُمُ الْحَوْضُ، وَإِنِّي لأَنْظُرُ إِلَيْهِ مِنْ مَقَامِي هَذَا، أَلَا وَإِنِّي لَسْتُ أَخْشَى عَلَيْكُمْ أَن تُشْرِكُوا، وَلَكِنْ أَخْشَى عَلَيْكُمُ الدُّنْيَا أَنْ تَنَافَسُوهَا) قَالَ: فَكَانَتْ آخِرَ نَظْرَةٍ نَظَرْتُهَا إِلَى رَسُولِ الله ﷺ. رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ: (وَلكِنِّي أَخْشَى عَلَيْكُمُ الدُّنْيَا أَنْ تَنَافَسُوا فِيهَا، وَتَقْتَتِلُوا فَتَهْلِكُوا كَمَا

هَلَكَ مَنْ كَانَ قَبْلَكُمْ) قَالَ عُقْبَةُ: فَكَانَ آخِرَ مَا رَأَيْتُ رَسُولَ اللهِ ﷺ عَلَى الْمِنْبَرِ.

وَفِي رِوَايَةٍ قَالَ: (إِنِّي فَرَطٌ لَكُمْ وَأَنَا شَهِيدٌ عَلَيْكُمْ وَإِنِّي وَاللَّهِ لأَنْظُرُ إِلَى حَوْضِي الآنَ، وَإِنِّي قَدْ أُعْطِيتُ مَفَاتِيحَ خَزَائِنِ الأَرْضِ، أَوْ مَفَاتِيحَ الأَرْضِ، وَإِنِّي وَاللَّهِ مَا أَخَافُ عَلَيْكُمْ أَنْ تُشْرِكُوا بَعْدِي ولكِنْ أَخَافُ عَلَيْكُمْ أَنْ تَنَافَسُوا فِيهَا)

1862- Ji 'Uqbeyê kurê 'Amir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) (nêzîkî wefata xwe) çû ziyareta şehîdê Uhudê û piştî heşt salan ji wan re dua kir her wekî xatirê xwe ji sax û miriyan dixwest. Paşê derkete mînberê û got: "Ezê beriya we herime axîretê ji bo we amadekariyê bikim û ezê bibime şahid û govanê xebata we ya di rêya Xwedê de. Cihê ku ji we re hatiye sozdan hewz e. Ez di vî cihê xwe yê hanê de di cennetê de hewza Kewserê dibînim. Ez ji we natirsim ku hûn piştî min bikevine şirkê, lê ez di derbarê we de ji dunyayê ditirsim ku hûn di wê de bi hevdu re pêşbazî bikin." Rawî dibêje: Ev dîtina min ya Pêxemberê Xwedê (s.) ya dawîn bû.
*Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Di senedekê de: "Lê ez di derbarê we de ji dunyayê ditirsim ku hûn di wê de bi hevdu re pêşbaziyê bikin, bi hevdu re şer bikin û vêca wekî helakbûna kesê beriya we hûn jî helak bibin." Rawî dibêje: Eva, dîtina min ya dawîn bû ku min Pêxemberê Xwedê (s.) li ser mînberê dît.

Di senedekê de: Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ezê beriya we herime axîretê, ji bo we amadekariyê bikim û ezê bibime şahid û govanê xebata we ya di rêya Xwedê de. Bi sond, ez niha li hewzên xwe dinêrim û niha kilîtên xezînê erdê, yan jî kilîtên erdê, ji min re hatine dayin. Bi sond, ez ji we natirsim ku hûn piştî min bikevine şirkê, lê ez ditirsim ku hûn derbarê dunyayê de bi hevdu re pêşbaziyê bikin."

١٨٦٣- وَعَنْ أَبِي زَيْدٍ عَمْرِو بْنِ أَخْطَبَ الأَنْصَارِيِّ ﷺ قَالَ: صَلَّى بِنَا رَسُولُ اللهِ ﷺ الْفَجْرَ، وَصعِدَ المِنْبَرَ، فَخَطَبَنَا حَتَّى حَضَرَتِ الظُّهْرُ، فَنَزَلَ فَصَلَّى، ثُمَّ صَعِدَ المِنْبَرَ حَتَّى حَضَرَتِ العَصْرُ، ثُمَّ نَزَلَ فَصَلَّى، ثُمَّ صعَدَ المِنْبَرَ حَتَّى غَرَبَتِ الشَّمْسُ، فَأَخْبَرَنَا مَا كَانَ وَمَا هُوَ كَائِنٌ، فَأَعْلَمُنَا أَحْفَظُنَا. رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1863- Ji Ebû Zeyd 'Emrê kurê Extebê Ensarî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) nimêja sibehê bi me da kirin, derkete mînberê û ji me re xutbe xwend

  

heta ku bû wextê nimêja nîvro. Vêca ji mînberê berjêr bû nimêj bi me da kirin û piştre dîsa derkete mînberê heta ku bû wextê nimêja berêvarê. Paşê ji mînberê berjêr bû nimêj da kirin û paşê dîsa derkete mînberê heta ku roj çû ava. Ji tiştê bûyî û ji tiştê dê bibe agahî da me, vêca zanyartirînê me jiberkertirînê me (bi Qur'anê) ye. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٦٤- وَعَنْ عَائِشَةَ ﵂ قَالَتْ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (مَنْ نَذَرَ أَنْ يُطِيعَ اللَّهَ فَلْيُطِعْهُ، وَمَن نَذَرَ أَنْ يَعْصِيَ اللَّهَ، فَلَا يَعْصِهِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1864- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxember (s.) gotiye: "Kî nezir bike ku îta'eta Xwedê bike bila îta'etê bike û kî nezir bike ku bêemriya Xwedê bike bila bêemriyê neke." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٨٦٥- وَعَنْ أُمِّ شَرِيكٍ ﵂، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ أَمَرَهَا بِقَتْلِ الأَوْزَاغِ، وَقَالَ: (كَانَ يَنْفُخُ عَلَى إِبْرَاهِيمَ) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1865- Ji Ummu Şerîk (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) emrê wê kir bi kuştina dêmaran (qismekî ji marîjokan e) û got: Ewê pif dikire agirê Îbrahîm (e.) (agir gij/gur dikir)." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٦٦- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (مَنْ قَتَلَ وَزَغَةً فِي أَوَّلِ ضَرْبَةٍ، فَلَهُ كَذَا وَكَذَا حَسَنَةً، وَمَنْ قَتَلَهَا فِي الضَّرْبَةِ الثَّانِيَةِ، فَلَهُ كَذَا وَكَذَا حَسَنَةً دُونِ الأُولَى، وَإِنْ قَتَلَهَا فِي الضَّرْبَةِ الثَّالِثَةِ، فَلَهُ كَذَا وَكَذَا حَسَنَةً)

وَفِي رِوَايَةٍ: (مَنْ قَتَلَ وَزَغاً فِي أَوَّلِ ضَرْبَةٍ، كُتِبَ لَهُ مِائَةُ حَسَنَةٍ، وَفِي الثَّانِيَةِ دُونَ ذَلِكَ، وَفِي الثَّالِثَةِ دُونَ ذَلِكَ). رَوَاهُ مُسْلِم.

1866- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kî di derba pêşîn de dêmarekî bikuje ji wî re ewqas ewqas xêr heye, kî di derba duyem de wê bikuje ji wî re jî ewqas ewqas (ji ya yekem kêmtir) xêr heye û kî jî di derba sêyem de wê bikuje ji wî re jî ewqas ewqas xêr heye."

Di senedekê de: Kî di derba pêşîn de dêmarekî bikuje jê re sed xêr tê nivîsandin, kî di derba duyem de bikuje ji wî re ji vê xêrê kêmtir xêr tê

nivîsandin û kî jî di derba sêyem de bikuje ji wî re jî ji wê kêmtir xêr tê nivîsandin. *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٦٧ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (قَالَ رَجُلٌ: لأَتَصَدَّقَنَ بِصَدَقَةٍ، فَخَرَجَ بِصَدَقَتِهِ، فَوَضَعَهَا فِي يَدِ سَارِقٍ، فَأَصْبَحُوا يَتَحَدَّثُونَ: تُصُدِّقَ عَلَى سَارِقٍ، فَقَالَ: اللَّهُمَّ لَكَ الْحَمْدُ لأَتَصَدَّقَنَّ بِصَدَقَةٍ، فَخَرَجَ بِصَدَقَتِهِ، فَوَضَعَهَا فِي يَدِ زَانِيَةٍ، فَأَصْبَحُوا يَتَحَدَّثُونَ: تُصُدِّقَ اللَّيْلَةَ عَلَى زَانِيَةٍ، فَقَالَ: اللَّهُمَّ لَكَ الْحَمْدُ عَلَى زَانِيَةٍ، لأَتَصَدَّقَنَّ بِصَدَقَةٍ، فَخَرَجَ بِصَدَقَتِهِ، فَوَضَعَهَا فِي يَدِ غَنِيٍّ، فَأَصْبَحُوا يَتَحَدَّثُونَ: تُصُدِّقَ عَلَى غَنِيٍّ، فَقَالَ: اللَّهُمَّ لَكَ الْحَمْدُ عَلَى سَارِقٍ، وَعَلَى زَانِيَةٍ، وَعَلَى غَنِيٍ، فَأُتِيَ فَقِيلَ لَهُ: أَمَّا صَدَقَتُكَ عَلَى سَارِقٍ، فَلَعَلَّهُ أَنْ يَسْتَعِفَّ عَنْ سَرِقَتِهِ، وَأَمَّا الزَّانِيَةُ فَلَعَلَّهَا أَنْ تَسْتَعِفُ عَنْ زِنَاهَا، وَأَمَّا الْغَنِيُّ فَلَعَلَّهُ أَنْ يَعْتَبِرَ، فَيُنْفِقَ مِمَّا آتَاهُ الله) رَوَاهُ الْبُخَارِي بِلَفْظِهِ، وَمُسْلِمٌ بِمَعْنَاهُ.

1867- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Mirovekî (ji Benî Îsraîliyan) got: Bi sond, ezê sedeqekê bidim. Vêca wî mirovî sedeqa xwe derxist û ew (bi nezanî) da dizekî. Wextê bû sibeh xelkê gotin: Wey! Îşev sedeqe dane yê diz (qet tiştekî wisa dibe). Vêca wî mirovê sedeqe dayî got: Xwedayo! Hemd ji te re be. Ezê dîsa sedeqekê bidim. Vêca dîsa sedeqa xwe derxist û (bi nezanî) da jineke zinaker. Wextê bû sibeh xelkê gotin: Wey! Îşev sedeqe dane jinika zinaker (qet tiştekî wisa dibe). Vêca ewî mirovê sedeqe dayî got: Xwedayo! Hemd ji te re be. Ezê dîsa sedeqekê bidim. Vêca dîsa sedeqa xwe derxist û (bi nezanî) da mirovekî dewlemend. Wextê bû sibe xelkê gotin: Wey! Îşev sedeqe dane dewlemendî (qet tiştekî wisa dibe). Vêca wî mirovê sedeqe dayî got: Xwedayo! Hemd ji te re be li ser sedeqa ku min daye dizekî, zinakerê û dewlemendî. Li ser vê yekê ji wî kesî re hate gotin: Heçîka sedeqa te ya ji diz re hêvî heye ku ew dev ji diziyê berde, heçîka jinika zinaker ew jî hêvî heye ku ew dev ji zinayê berde û yê dewlemend jî hêvî heye ku ew îbret hilde û ji wî malê ku Xwedê te'ala dayê bimezixîne." *Buxarî rîwayet kiriye û Muslim jî bi mana vê rîwayet kiriye.*

١٨٦٨ - وَعَنْهُ قَالَ: كُنَّا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي دَعْوَةٍ، فَرُفِعَ إِلَيْهِ الذِّرَاعُ، وَكَانَتْ تُعْجِبُهُ،

فَنَهَسَ مِنْهَا نَهْسَة وَقَالَ: (أَنَا سَيِّدُ النَّاسِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، هَلْ تَدْرُونَ مِمَّ ذَاكَ؟ يَجْمَعُ الله الأَوَّلِينَ وَالآخَرِينَ فِي صَعِيدٍ وَاحِدٍ، فَيُبْصِرُهُمُ النَّاظِرُ، وَيُسْمِعُهُمُ الدَّاعِي، وَتَدْنُو مِنْهُمُ الشَّمْسُ، فَيَبْلُغُ النَّاسُ مِنَ الْغَمِّ وَالْكَرْبِ مَا لَا يُطِيقُونَ وَلَا يَحْتَمِلُونَ، فَيَقُولُ النَّاسُ: أَلَا تَرَوْنَ إِلَى مَا أَنْتُمْ فِيهِ إِلَى مَا بَلَغَكُمْ، أَلَا تَنْظُرُونَ مَنْ يَشْفَعُ لَكُمْ إِلَى رَبِّكُمْ؟ فَيَقُولُ بَعْضُ النَّاسِ لِبَعْضٍ: أَبُوكُمْ آدَمُ، وَيَأْتُونَهُ فَيَقُولُونَ: يَا آدَمُ أَنْتَ أَبُو الْبَشَرِ، خَلَقَكَ اللَّهُ بِيَدِهِ، وَنفَخَ فِيكَ مِنْ رُوحِهِ، وَأَمَرَ المَلَائِكَةَ، فَسَجَدُوا لَكَ وَأَسْكَنَكَ الْجَنَّةَ، أَلَا تَشْفَعُ لَنَا إِلَى رَبِّكَ؟ أَلَا تَرَى مَا نَحْنُ فِيهِ، وَمَا بَلَغْنَا؟ فَقَالَ: إِنَّ رَبِّي غَضِبَ غَضَباً لَمْ يَغْضَبْ قَبْلَهُ مِثْلَهُ، وَلَا يَغْضَبُ بَعْدَهُ مِثْلَهُ، وَإِنَّهُ نَهَانِي عَنِ الشَّجَرَةِ، فَعَصَيْتُ، نَفْسِي نَفْسِي نَفْسِي، اذْهَبُوا إِلَى غَيْرِي، اذْهَبُوا إِلَى نُوحٍ، فَيَأْتُونَ نُوحاً فَيَقُولُونَ: يَا نُوحُ، أَنْتَ أَوَّلُ الرُّسُلِ إِلَى أَهْلِ الأَرْضِ، وَقَدْ سَمَّاكَ اللَّهُ عَبْداً شَكُوراً، أَلَا تَرَى إِلَى مَا نَحْنُ فِيهِ، أَلَا تَرَى إِلَى مَا بَلَغْنَا أَلَا تَشْفَعُ لَنَا إِلَى رَبِّكَ؟ فَيَقُولُ: إِنَّ رَبِّي غَضِبَ الْيَوْمَ غَضَباً لَمْ يَغْضَبْ قَبْلَهُ مِثْلَهُ، وَلَنْ يَغْضَبَ بَعْدَهُ مِثْلَهُ، وَإِنَّهُ قَدْ كَانَتْ لِي دَعْوَةٌ دَعَوْتُ بِهَا عَلَى قَوْمِي، نَفْسِي نَفْسِي نَفْسِي، اذْهَبُوا إِلَى غَيْرِي، اذْهَبُوا إِلَى إِبْرَاهِيمَ، فَيَأْتُونَ إِبْرَاهِيمَ فَيَقُولُونَ: يَا إِبْرَاهِيمُ أَنْتَ نَبِيُّ الله وَخَلِيلُهُ مِنْ أَهْلِ الأَرْضِ، اشْفَعْ لَنَا إِلَى رَبِّكَ، أَلَا تَرَى إِلَى مَا نَحْنُ فِيهِ؟ فَيَقُولُ لَهُمْ: إِنَّ رَبِّي قَدْ غَضِبَ الْيَوْمَ غَضَباً لَمْ يَغْضَبْ قَبْلَهُ مِثْلَهُ، وَلَنْ يَغْضَبَ بَعْدَهُ مِثْلَهُ، وَإِنِّي كُنْتُ كَذَبْتُ ثَلَاثَ كَذَبَاتٍ، نَفْسِي نَفْسِي نَفْسِي، اذْهَبُوا إِلَى غَيْرِي، اذْهَبُوا إِلَى مُوسَى، فَيَأْتُونَ مُوسَى، فَيَقُولُونَ: يَا مُوسَى أَنْتَ رَسُولُ الله فَضَّلَكَ الله بِرِسَالَاتِهِ وَبِكَلَامِهِ عَلَى النَّاسِ، اشْفَعْ لَنَا إِلَى رَبِّكَ، أَلَا تَرَى إِلَى مَا نَحْنُ فِيهِ؟ فَيَقُولُ: إِنَّ رَبِّي قَدْ غَضِبَ الْيَوْمَ غَضَباً لَمْ يَغْضَبْ قَبْلَهُ مِثْلَهُ، وَلَنْ يَغْضَبَ بَعْدَهُ مِثْلَهُ، وَإِنِّي قَدْ قَتَلْتُ نَفْساً لَمْ أُومَرْ بِقَتْلِهَا، نَفْسِي نَفْسِي نَفْسِي، اذْهَبُوا إِلَى غَيْرِي، اذْهَبُوا إِلَى عِيسَى، فَيَأْتُونَ عِيسَى، فَيَقُولُونَ: يَا عِيسَى

أَنْتَ رَسُولُ الله وَكَلِمَتُهُ أَلْقَاهَا إِلَى مَرْيَمَ وَرُوحٌ مِنْهُ، وَكَلَّمْتَ النَّاسَ فِي المَهْدِ، اشْفَعْ لَنَا إِلَى رَبّكَ، أَلَا تَرَى إِلَى مَا نَحْنُ فِيهِ؟ فَيَقُولُ عِيسَى: إِنَّ رَبِّي قَدْ غَضِبَ الْيَوْمَ غَضَباً لَمْ يَغْضَبْ قَبْلَهُ مِثْلَهُ، وَلَنْ يَغْضَبَ بَعْدَهُ مِثْلَهُ وَلَمْ يَذْكُرْ ذَنْباً، نَفْسِي نَفْسِي نَفْسِي، اذْهَبُوا إِلَى غَيْرِي، اذْهَبُوا إِلَى مُحَمَّدٍ ﷺ)

وَفِي رِوَايَةٍ: (فَيَأْتُونِي فَيَقُولُونَ: يَا مُحَمَّد أَنْتَ رَسُولُ اللَّهِ، وَخَاتَمُ الأَنْبِيَاءِ، وَقَدْ غَفَرَ الله لَكَ مَا تَقَدَّمَ مِنْ ذَنْبِكَ وَمَا تَأَخَّرَ، اشْفَعْ لَنَا إِلَى رَبِّكَ، أَلَا تَرَى إِلَى مَا نَحْنُ فِيهِ؟ فَأَنْطَلِقُ، فآتِي تَحْتَ الْعَرْشِ، فَأَقَعُ سَاجِداً لِرَبِّي، ثُمَّ يَفْتَحُ الله عَلَيَّ مِنْ مَحَامِدِهِ، وَحُسْنِ الثَّنَاءِ عَلَيْهِ شَيْئاً لَمْ يَفْتَحْهُ عَلَى أَحَدٍ قَبْلِي، ثُمَّ يُقَالُ: يَا محَمَّدُ ارْفَع رَأْسَكَ، سَلْ تُعْطَهْ، وَاشْفَعْ تُشَفَّعْ، فَأَرْفَعُ رَأْسِي، فَأَقُولُ أُمَّتِي يَا رَبِّ، أُمَّتِي يَا رَبِّ أُمَّتِي، فَيُقَالُ: يَا مُحَمَّدُ أَدْخِلْ مِنْ أُمَّتِكَ مَنْ لَا حِسَابَ عَلَيْهِمْ مِنَ الْبَابِ الأَيْمَنِ مِنْ أَبْوَابِ الْجَنَّةِ وَهُمْ شُرَكَاءُ النَّاسِ فِيمَا سِوَى ذلِكَ مِنَ الأَبْوَابِ ثُمَّ قالَ: وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ إِنَّ مَا بَيْنَ الْمِصْرَاعَيْنِ مِنْ مَصَارِيعِ الْجَنَّةِ كَمَا بَيْنَ مَكَّةَ وَهَجَرَ، أَوْ كَمَا بَيْنَ مَكَّةَ وَبُصْرَى). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1868- Dîsa ji wî (r.), got: Em di daweteke de digel Pêxemberê Xwedê (s.) bûn, vêca pol/pîlê heywana serjêkirî ji Pêxemberê Xwedê (s.) re hate anîn. Ewî (s.) ji pol hez dikir û bi diranê xwe gezek li wî goştî da û got: "Ez roja qiyametê serwerê însana me. Qey hûn sedema wê dizanin? Xwedê te'ala wê însanê pêşîn û paşîn di hevrazekî de kom bike; kesê ku li wan binêre wê wan hemûyan di nêrîneke de bibîne û gazîker jî wê dengê xwe bi wan hemûyan bide bihîstin û roj jî wê wisa nêzîkî wan bibe ku xem û keder wê bigihêje însanan bi awayekî wisa ku însan nikaribin wan xeman ragirin. Li ser vê yekê însan wê ji hevdu re bêjin: Qey hûn rewşa ku hûn tê de ne nabînin û hûn çima li wî yê ku ji we re li bal Rebbê we mehderê bike nanêrin? Vêca hineke însanan wê bêjin. Bavê we Adem. Û wê herine bal wî (e.) û jê re bêjin: Ya Adem! Tu bavê însanan î, Xwedê te'ala te bi destê xwe afirandî ye, ji ruhê xwe pifî te kiriye, emrê milyaketan jî kiriye û vêca ew ji te re çûne secdê û wî (c.c.) te di cennetê dayî sekinandinê. Gelo, tu li bal Rebbê xwe ji bo me mehderê nakî? Qey tu rewşa ku em tê

  

de ne û em gihîştinê nabînî? Hz. Adem ê bêje: Bêguman Rebbê min wisa xeyîdiye ku ne berê wisa xeyîdiye û ne jî ji vir pêde wê wisa bixeyîde û yek jî wî (c.c.) nehya min kir ji darê lê min bêemriya wî kir (ez îro bes bi xwe ve mijûl im:) Nefsî nefsî, nefsî. Hûn herine bal xeynê min, hûn herine bal Hz. Nûh (s.). Wê herine bal Hz. Nûh û wê bêjin: Ya Nûh! Tu li ser rûyê erdê ewilê resûlan î û Xwedê te'ala jî tu bi 'ebdê şikurdar binavkirî. Qey tu rewşa ku em tê de ne nabînî, qey tu rewşa ku em gihîştinê nabînî û gelo tu li cem Rebbê xwe ji bo me mehderê nakî? Hz. Nûh ê jî bêje: Bêguman Rebbê min îro wisa xeyîdiye ku ne berê wisa xeyîdiye û ne jî ji vir pêde wê wisa bixeyîde û yek jî di demekê de min ji bo qewmê xwe nifir kiribû (ez îro bes bi xwe ve mijûl im:) Nefsî, nefsî, nefsî. Hûn herine bal xeynî min, hûn herine bal Hz. Îbrahîm (e.). Ewê herine bal Hz. Îbrahîm û bêjin: Ya Îbrahîm! Tu Pêxemberê Xwedê yî û di neqeba ehlê erdê de jî tu dostê wî ye. Tu li cem Rebbê xwe ji me re mehderê bike. Qey tu rewşa ku em tê de ne nabînî? Hz. Îbrahîmê jî wê bêje: Bêguman Rebbê min îro wisa xeyîdiye ku ne berê wisa xeyîdiye û ne jî vir pê de wê wisa bixeyîde û yek jî min di dunyayê de sê derew kirine (ez îro bes bi xwe ve mijûl im:) Nefsî, nefsî, nefsî. Hûn herine bal xeynê min, hûn herine bal Hz. Mûsa (e.). Ewê herine bal Hz. Mûsa û bêjin: Ya Mûsa! Tu Pêxemberê Xwedê yî û Xwedê te'ala te bi rîsalet û kelamê xwe tefdîl kiriye li ser însanan. Tu li cem Rebbê xwe ji me re mehderê bike. Qey tu rewşa ku em tê de ne nabînî? Hz. Mûsa yê jî wê bêje: Bêguman Rebbê min îro wisa xeyîdiye ku ne berê wisa xeyîdiye û ne jî ji virpê de wê wisa bixeyîde û yek jî min di dunyayê de mirovek kuşt ku ez bi kuştina wî nehatibûm emirkirin (ez îro bes bi xwe ve mijûl im:) Nefsî, nefsî, nefsî. Hûn herine bal xeynê min, hûn herine bal Hz. Îsa (e.). Ewê herine bal Hz. Îsa û wê bêjin: Ya Îsa! Tu Pêxemberê Xwedê yî, kelîma wî yî ya ku avêtiye bal Meryemê ve û rûhekî ji wî (c.c.) yî û te bi însanan re di derguşê de xeber da. Tu li bal Rebbê xwe ji me re mehderê bike. Qey tu rewşa ku em tê de ne nabînî? Hz. Îsayê jî wê bêje: Bêguman Rebbê min îro wisa xeyîdiye ku ne berê wisa xeyîdiye û ne jî ji vir pêde wê wisa bixeyîde, behsa tu gunehî nake, (ez îro bes bi xwe ve mijûl im:) Nefsî, nefsî, nefsî. Hûn herne bal xeynê min, hûn herine bal Hz. Muhemmed (s.).

Di senedekê de: "Wê werine bal min û dê bêjin: Ya Muhemmed! Tu Pêxemberê Xwedê yî, dawînê Pêxembera yî û Xwedê te'ala gunehê te yê pêşîn û paşîn bexişandiye. Tu li bal Rebbê xwe ji me re mehderê bike. Qey tu rewşa ku em tê de ne nabînî?" Hz. Muhemmed (s.) dibêje: "Vêca ezê jî rabim herim binê erş û ji Rebbê xwe re herim secdê. Paşê Xwedê te'ala

hemd û pesndanê qenc ku beriya min nedaye tu kesî wê bide min. Û paşê wê gotin: Ya Muhemmed! Serê xwe rake, daxwazê bike wê daxwaza te bê dayin û mehderê bike wê mehdera te bê qebûlkirin." Hz. Muhemmed (s.) dibêje: "Ezê serê xwe rakim û bêjim: Ummeta min, ya Rebbî! Ummeta min, ya Rebbî! Vêca wê were gotin: Ya Muhemmed! Tu ji ummeta xwe kesê ku hesab li ser tuneye ji derê rastê (Babul-Eymen) daxilî cennetê bike. Û ew di derê din de jî hevparê însanan ne." Paşê ewî (s.) got: "Ez sond dixwim bi wî Xwedayê ku nefsa min di destê wî de ye, dûrahiya di navbera her du aliyê deriyê cennetê de her wekî dûrahiya di navbera Mekke û Hecerê yan jî wekî dûrahiya navbera Mekke û Busrayê ye." *Buxari û Muslim riwayet kirine.*

١٨٦٩ – وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: جَاءَ إِبْرَاهِيمُ ﷺ بِأُمِّ إِسْمَاعِيلَ وَبِابْنِهَا إِسْمَاعِيلَ وَهِيَ تُرْضِعُهُ حَتَّى وَضَعَهَا عِنْدَ الْبَيْتِ عِنْدَ دَوْحَةٍ فَوْقَ زَمْزَمَ فِي أَعْلَى الْمَسْجِدِ وَلَيْسَ بِمَكَّةَ يَوْمَئِذٍ أَحَدٌ وَلَيْسَ بِهَا مَاءٌ، فَوَضَعَهُمَا هُنَاكَ، وَوَضَعَ عِنْدَهُمَا جِرَاباً فِيهِ تَمْر، وَسِقَاءً فِيهِ مَاءٌ، ثُمَّ قَفَّى إِبْرَاهِيمُ مُنْطَلِقاً، فَتَبِعَتْهُ أُمُّ إِسْمَاعِيلَ فَقَالَتْ: يَا إِبْرَاهِيمُ، أَيْنَ تَذْهَبُ وَتَتْرُكُنَا بِهَذَا الْوَادِي الَّذِي لَيْسَ فِيهِ أَنِيسٌ وَلَا شَيْءٌ؟ فَقَالَتْ لَهُ ذَلِكَ مِرَاراً، وَجَعَلَ لَا يَلْتَفِتُ إِلَيْهَا، قَالَتْ لَهُ: اللَّهُ أَمَرَكَ بِهَذَا؟ قَالَ: نَعَمْ. قَالَتْ: إِذاً لَا يُضَيِّعُنَا، ثُمَّ رَجَعَتْ، فَانْطَلَقَ إِبْرَاهِيمُ ﷺ حَتَى إِذَا كَانَ عِنْدَ الثَّنِيَّةِ حَيْثُ لَا يَرَوْنَهُ، اِسْتَقْبَلَ بِوَجْهِهِ الْبَيْتَ، ثُمَّ دَعَا بِهَؤُلَاءِ الدَّعَوَاتِ، فَرَفَعَ يَدَيْهِ فَقَالَ: (رَبَّنَا إِنِّي أَسْكَنْتُ مِنْ ذُرِّيَّتِي بِوَادٍ غَيْرِ ذِي زَرْع) حَتَّى بَلَغَ (يَشْكُرُونَ) وَجَعَلَتْ أُمُّ إِسْمَاعِيلَ تُرْضِعُ إِسْمَاعِيلَ، وَتَشْرَبُ مِنْ ذَلِكَ المَاءِ، حَتَّى إِذَا نَفِدَ مَا فِي السِّقَاءِ، عَطِشَتْ، وَعَطِشَ اِبْنُهَا، وَجَعَلَتْ تَنْظُرُ إِلَيْهِ يَتَلَوَّى – أَوْ قَالَ: يَتَلَبَّطُ – فَانْطَلَقَتْ كَرَاهِيَةَ أَنْ تَنْظُرَ إِلَيْهِ، فَوَجَدَتِ الصَّفَا أَقْرَبَ جَبَلٍ فِي الأَرْضِ يَلِيهَا، فَقَامَتْ عَلَيْهِ، ثُمَّ اسْتَقْبَلَتِ الْوَادِيَ تَنْظُرُ هَلْ تَرَى أَحَداً؟ فَلَمْ تَرَ أَحَداً، فَهَبَطَتْ مِنَ الصَّفَا حَتَّى إِذَا بَلَغَتِ الْوَادِيَ، رَفَعَتْ طَرَفَ دِرْعِهَا، ثُمَّ سَعَتْ سَعْيَ الإِنْسَانِ المَجْهُودِ حَتَّى جَاوَزَتِ الْوَادِي، ثُمَّ أَتَتِ المَرْوَةَ، فَقَامَتْ عَلَيْهَا، فَنَظَرَتْ هَلْ تَرَى أَحَداً؟ فَلَمْ تَرَ أَحَداً،

فَفَعَلَتْ ذَلِكَ سَبْعَ مَرَّاتٍ.

قَالَ ابْنُ عَبَّاسٍ ﷺ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (فَذلِكَ سَعْيُ النَّاسِ بَيْنَهُمَا) فَلَمَّا أَشْرَفَتْ عَلَى الْمَرْوَةِ سَمِعَتْ صَوْتاً، فَقَالَتْ: صَهْ - تُرِيدُ نَفْسَهَا - ثُمَّ تَسَمَّعَتْ، فَسَمِعَتْ أَيْضاً فَقَالَتْ: قَدْ أَسْمَعْتَ إِنْ كَانَ عِنْدَكَ غَوَاثٌ، فَإِذَا هِيَ بِالْمَلَكِ عِنْدَ مَوْضِعِ زَمْزَمَ، فَبَحَثَ بِعَقِبِهِ - أَوْ قَالَ بِجَنَاحِهِ -حَتَّى ظَهَرَ الْمَاءُ، فَجَعَلَتْ تُحَوِّضُهُ وَتَقُولُ بِيَدِهَا هَكَذَا، وَجَعَلَتْ تَغْرُفُ الْمَاءَ فِي سِقَائِهَا وَهُوَ يَفُورُ بَعْدَ مَا تَغْرِفُ،

وَفِي رِوَايَةٍ: بِقَدَرِ مَا تَغْرِفُ.

قَالَ ابْنُ عَبَّاسٍ ﷺ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (رَحِمَ الله أُمَّ إِسْمَاعِيلَ لَوْ تَرَكَتْ زَمْزَمَ) أَوْ قَالَ: (لَوْ لَمْ تَغْرِفْ مِنَ الْمَاءِ، لَكَانَتْ زَمْزَمُ عَيْناً مَعِيناً) قَالَ: فَشَرِبَتْ، وَأَرْضَعَتْ وَلَدَهَا، فَقَالَ لَهَا الْمَلَكُ: لَا تَخَافُوا الضَّيْعَةَ فَإِنَّ هَهُنَا بَيْتاً لِلَّهِ يَبْنِيهِ هَذَا الْغُلَامُ وَأَبُوهُ، وَإِنَّ اللَّهَ لَا يُضَيِّعُ أَهْلَهُ، وَكَانَ الْبَيْتُ مُرْتَفِعاً مِنَ الأَرْضِ كَالرَّابِيَةِ تَأْتِيهِ السُّيُولُ، فَتَأْخُذُ عَنْ يَمِينِهِ وَعَنْ شِمَالِهِ، فَكَانَتْ كَذَلِكَ حَتَّى مَرَّتْ بِهِمْ رُفْقَةٌ مِنْ جُرْهُمٍ، أَوْ أَهْلُ بَيْتٍ مِنْ جُرْهُمٍ مُقْبِلِينَ مِنْ طَرِيقِ كَدَاءَ، فَنَزَلُوا فِي أَسْفَلِ مَكَّةَ، فَرَأَوْا طَائِراً عَائِفاً فَقَالُوا: إِنَّ هَذَا الطَّائِرَ لَيَدُورُ عَلَى مَاءٍ لَعَهْدُنَا بِهَذَا الْوَادِي وَمَا فِيهِ مَاءٌ، فَأَرْسَلُوا جَرِيّاً أَوْ جَرِيَّيْنِ، فَإِذَا هُمْ بِالْمَاءِ، فَرَجَعُوا، فَأَخْبَرُوهُمْ، فَأَقْبَلُوا وَأُمُّ إِسْمَاعِيلَ عِنْدَ الْمَاءِ، فَقَالُوا: أَتَأْذَنِينَ لَنَا أَنْ نَنْزِلَ عِنْدَكِ؟ قَالَتْ: نَعَمْ، وَلَكِنْ لَا حَقَّ لَكُمْ فِي الْمَاءِ، قَالُوا: نَعَمْ، قَالَ ابْنُ عَبَّاسٍ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (فَأَلْفَى ذَلِكَ أُمَّ إِسمَاعِيلَ، وَهِيَ تُحِبُّ الأُنْسَ) فَنَزَلُوا، فَأَرْسَلُوا إِلَى أَهْلِيهِم فَنَزَلُوا مَعَهُمْ، حَتَّى إِذَا كَانُوا بِهَا أَهْل أَبْيَاتٍ، وَشَبَّ الْغُلَامُ، وَتَعَلَّمَ العَرَبِيَّةَ مِنْهُمْ وَأَنْفَسَهُم وَأعجَبَهُمْ حِينَ شَبَّ، فَلَمَّا أَدْرَكَ، زَوَّجُوهُ إِمْرَأَةً مِنْهُمْ، وَمَاتَتْ أُمُّ إسمَاعِيلَ، فَجَاءَ إِبْرَاهِيمُ بَعْدَ مَا تَزَوَّجَ إِسْمَاعِيلُ يُطَالِعُ تَرِكَتَهُ فَلَمْ يَجِدْ إِسْمَاعِيلَ، فَسَأَلَ إِمْرَأَتَهُ عَنْهُ فَقَالَتْ: خَرَجَ يَبْتَغِي لَنَا

- وَفِي رِوَايَةٍ: يَصِيدُ لَنَا -ثُمَّ سَأَلَها عَنْ عَيْشِهِمْ وَهَيْئَتِهِمْ فَقَالَتْ: نَحْنُ بِشَرٍّ، نَحْنُ فِي ضِيقٍ وَشِدَّةٍ، وَشَكَتْ إِلَيْهِ، قَالَ: فَإِذَا جَاءَ زَوْجُكِ، أَقْرَئِي عَلَيْهِ السَّلَامَ، وَقُولِي لَهُ يُغَيِّرْ عَتَبَةَ بَابِهِ، فَلَمَّا جَاءَ إِسْمَاعِيلُ كَأَنَّهُ آنَسَ شَيْئاً، فَقَالَ: هَلْ جَاءَكُمْ مِنْ أَحَدٍ؟ قَالَتْ: نَعَمْ، جَاءَنَا شَيْخٌ كَذَا وَكَذَا، فَسَأَلَنَا عَنْكَ، فَأَخْبَرْتُهُ، فَسَأَلَنِي: كَيْفَ عَيْشُنَا، فَأَخْبَرْتُهُ أَنَّا فِي جَهْدٍ وَشِدَّةٍ، قَالَ: فَهَلْ أَوْصَاكِ بِشَيْءٍ؟ قَالَتْ: نَعَمْ أَمَرَنِي أَنْ أَقْرَأَ عَلَيْكَ السَّلَامَ وَيَقُولُ: غَيِّرْ عَتَبَةَ بَابِكَ، قَالَ: ذَاكَ أَبِي، وَقَدْ أَمَرَنِي أَنْ أُفَارِقَكِ، اِلْحَقِي بِأَهْلِكِ. فَطَلَّقَهَا، وَتَزَوَّجَ مِنْهُمْ أُخْرَى. فَلَبِثَ عَنْهُمْ إِبْرَاهِيمُ مَا شَاءَ الله، ثُمَّ أَتَاهُمْ بَعْدُ، فَلَمْ يَجِدْهُ، فَدَخَلَ عَلَى إِمْرَأَتِهِ، فَسَأَلَ عَنْهُ، قَالَتْ: خَرَجَ يَبْتَغِي لَنَا، قَالَ: كَيْفَ أَنْتُمْ؟ وَسَأَلَهَا عَنْ عَيْشِهِمْ وَهَيْئَتِهِمْ. فَقَالَتْ: نَحْنُ بِخَيْرٍ وَسَعَةٍ، وَأَثْنَتْ عَلَى اللَّهِ تَعَالَى، فَقَالَ: مَا طَعَامُكُمْ؟ قَالَتْ: اللَّحْمُ. قَالَ: فَمَا شَرَابُكُمْ؟ قَالَتِ: المَاءُ، قَالَ: اللَّهُمَّ بَارِكْ لَهُمْ فِي اللَّحْمِ وَالمَاءِ، قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: (وَلَمْ يَكُنْ لَهُمْ يَوْمَئِذٍ حَبٌّ، وَلَوْ كَانَ لَهُمْ دَعَا لَهُمْ فِيهِ) قَالَ: فَهُمَا لَا يَخْلُو عَلَيْهِمَا أَحَدٌ بِغَيْرِ مَكَّةَ إِلَّا لَمْ يُوَافِقَاهُ.

وَفِي رِوَايَةٍ فَجَاءَ فَقَالَ: أَيْنَ إِسْمَاعِيلُ؟ فَقَالَتْ إِمْرَأَتُهُ: ذَهَبَ يَصِيدُ، فَقَالَتْ إِمْرَأَتُهُ: أَلَا تَنْزِلُ، فَتَطْعَمَ وَتَشْرَبَ؟ قَالَ: وَمَا طَعَامُكُمْ وَمَا شَرَابُكُمْ؟ قَالَتْ: طَعَامُنَا اللَّحْمُ، وَشَرَابُنَا المَاءُ، قَالَ: اللهُمَّ بَارِكْ لَهُمْ فِي طَعَامِهِمْ وَشَرَابِهِمْ، قَالَ: فَقَالَ أَبُو الْقَاسِمِ ﷺ: (بَرَكَةُ دَعْوَةِ إِبْرَاهِيمَ ﷺ).

قَالَ: فَإِذَا جَاءَ زَوْجُكِ، فأَقْرَئِي عَلَيْهِ السَّلامَ وَمُرِيهِ يُثَبِّتْ عَتَبَةَ بَابِهِ، فَلَمَّا جَاءَ إِسْمَاعِيلُ، قَالَ: هَلْ أَتَاكُمْ مِنْ أَحَدٍ؟ قَالَتْ: نَعَمْ، أَتَانَا شَيْخٌ حَسَنُ الْهَيْئَةِ، وَأَثْنَتْ عَلَيْهِ، فَسَأَلَنِي عَنْكَ، فَأَخْبَرْتُهُ، فَسَأَلَنِي كَيْفَ عَيْشُنَا، فَأَخْبَرْتُهُ أَنَّا بِخَيْرٍ، قَالَ: فَأَوْصَاكِ بِشَيْءٍ؟ قَالَتْ: نَعَمْ، يَقْرَأُ عَلَيْكَ السَّلامَ، وَيَأْمُرُكَ أَنْ تُثَبِّتَ عَتَبَةَ بَابِكَ، قَالَ: ذَاكَ أَبِي، وَأَنْتِ الْعَتَبَةُ

أَمَرَنِي أَنْ أُمْسِكَكِ، ثُمَّ لَبِثَ عَنْهُمْ مَا شَاءَ اللهُ، ثُمَّ جَاءَ بَعْدَ ذلِكَ وَإِسْمَاعِيلُ يَبْرِي نَبْلاً لَهُ تَحْتَ دَوْحَةٍ قَرِيْباً مِنْ زَمْزَمَ، فَلَمَّا رَآهُ، قَامَ إِلَيْهِ، فَصَنَعَ كَمَا يَصْنَعُ الْوَالِدُ بِالْوَلَدِ، وَالْوَلَدُ بِالْوَالِدِ، قَالَ يَا إِسْمَاعِيلُ إِنَّ اللهَ أَمَرَنِي بِأَمْرٍ، قَالَ: فَاصْنَعْ مَا أَمَرَكَ رَبُّكَ؟ قَالَ: وَتُعِينُنِي؟ قَالَ: وَأُعِينُكَ، قَالَ: فَإِنَّ اللهَ أَمَرَنِي أَنْ أَبْنِيَ بَيْتاً هَهُنَا، وَأَشَارَ إِلَى أَكَمَةٍ مُرْتَفِعَةٍ عَلَى مَا حَوْلَهَا، فَعِنْدَ ذَلِكَ رَفَعَ الْقَوَاعِدَ مِنَ الْبَيْتِ، فَجَعَلَ إِسْمَاعِيلُ يَأْتِي بِالْحِجَارَةِ، وَإِبْرَاهِيمُ يَبْنِي حَتَّى إِذَا ارْتَفَعَ الْبِنَاءُ، جَاءَ بِهَذَا الحَجَرِ فَوَضَعَهُ لَهُ فَقَامَ عَلَيْهِ، وَهُوَ يَبْنِي، وَإِسْمَاعِيلُ يُنَاوِلُهُ الحِجَارَةَ وَهُمَا يَقُولَانِ: (رَبَّنَا تَقَبَّلْ مِنَّا إِنَّكَ أَنْتَ السَّمِيعُ الْعَلِيْمُ)

وَفِي رِوَايَةٍ: إِنَّ إِبْرَاهِيمَ خَرَجَ بِإِسْمَاعِيلَ وَأُمِّ إِسْمَاعِيلَ، مَعَهُمْ شَنَّةٌ فِيهَا مَاءٌ، فَجَعَلَتْ أُمُّ إِسْمَاعِيلَ تَشْرَبُ مِنَ الشَّنَّةِ، فَيَدِرُّ لَبَنُهَا عَلَى صَبِيِّهَا حَتَّى قَدِمَ مَكَّةَ، فَوَضَعَهَا تَحْتَ دَوْحَةٍ، ثُمَّ رَجَعَ إِبْرَاهِيمُ إِلَى أَهْلِهِ، فَاتَّبَعَتْهُ أُمُّ إِسْمَاعِيلَ حَتَّى لَمَّا بَلَغُوا كَدَاءَ، نَادَتْهُ مِنْ وَرَائِهِ: يَا إِبْرَاهِيمُ إِلَى مَنْ تَتْرُكُنَا؟ قَالَ: إِلَى اللَّهِ، قَالَتْ: رَضِيتُ بِاللَّهِ، فَرَجَعَتْ، وَجَعَلَتْ تَشْرَبُ مِنَ الشَّنَّةِ، وَيَدُرُّ لَبَنُهَا عَلَى صَبِيِّهَا حَتَّى لَمَّا فَنِيَ الْمَاءُ قَالَتْ: لَوْ ذَهَبْتُ، فَنَظَرْتُ لَعَلِّي أُحِسُّ أَحَداً، قَالَ: فَذَهَبَتْ فَصَعِدَتِ الصَّفا، فَنَظَرَتْ وَنَظَرَت هَلْ تُحِسُّ أَحَداً، فَلَمْ تُحِسَّ أَحداً، فَلَمَّا بَلَغَتِ الْوَادِي، سَعَتْ، وَأَتَتِ المَرْوَةَ، وَفَعَلَتْ ذَلِكَ أَشْوَاطاً، ثُمَّ قَالَتْ: لَوْ ذَهَبْتُ فَنَظَرْتُ مَا فَعَلَ الصَّبِيُّ، فَذَهَبَتْ وَنَظَرَتْ، فَإِذَا هُوَ عَلَى حَالِهِ كَأَنَّهُ يَنْشَغُ لِلْمَوْتِ، فَلَمْ تُقِرَّهَا نَفْسُهَا، فَقَالَتْ: لَوْ ذَهَبْتُ، فَنَظَرْتُ لَعَلِّي أُحِسُّ أَحَداً، فَذَهَبَتْ فَصَعِدَتِ الصَّفَا، فَنَظَرَتْ وَنَظَرَتْ، فَلَمْ تُحِسَّ أَحداً حَتَّى أَتَمَّتْ سَبْعاً، ثُمَّ قَالَتْ: لَوْ ذَهَبْتُ، فَنَظَرْتُ مَا فَعَلَ، فَإِذَا هِيَ بِصَوْتٍ، فَقَالَتْ: أَغِثْ إِنْ كَانَ عِنْدَكَ خَيْرٌ، فَإِذَا جِبْرِيلُ ﷺ فَقَالَ بِعَقِبِهِ هَكَذَا، وَغَمَزَ بِعَقِبِه عَلَى الأَرْضِ، فَانْبَثَقَ الْمَاءُ فَدهِشَتْ أُمُّ إِسْمَاعِيلَ، فَجَعَلَتْ تَحْفِنُ وَذَكَرَ الحَدِيثَ بِطُولِه. رَوَاهُ الْبُخَارِي بِهَذِهِ الرِّوَايَاتِ كُلِّهَا.

1869- Ji 'Ebdullahê kurê 'Ebbas (r.), got: Îbrahîm (e.), dayika Îsmaîl û kurê wê Îsmaîl hê wextê li berşîr bû anî heta ku ew li bal Beytê û jora mescîdê serdestê Zemzemê danî bal dareke mezin. Wî çaxî di Mekkeyê de ne kes û ne jî av hebû. Vêca Hz. Îbrahîm ew her du li wê derê danîn û hebanek tijî xurme û meşkek jî tijî av danî bal wan, paşê pişta xwe da wan û çû. Vêca dayika Îsmaîl da pey wî û got: Ya Îbrahîm! Tu kuderê ve diçî û me di vê newalê de dihêlî ku tê de ne kesê sebra mirov pê were û ne jî tiştek heye. Ewê ev gotina xwe çend caran tekrar kir lê Hz. Îbrahîm berê xwe nedayê. Vêca wê ji Hz. Îbrahîm re got: Gelo Xwedê emrê te bi vê yekê kiriye? Hz. Îbrahîm (e.) got: Belê. Îcar wê jî: Wî çaxî Xwedê jî me zayî'/wenda nake, got û zivirî. Hz. Îbrahîm (e.) meşiya heta ku gihîşte Seniyyeyê ku êdî Hz. Hacer û kurê wî Îsmaîl wî nabînin, wî berê xwe vegerande Beytê û paşê bi van duayan dua kir: "Xwedayê me! Bi rastî min hinek ji dundeya/zurriyeta xwe li newaleke bê hêşînahî li cem mala te ya muherrem (Ke'be) hiştin. Xwedayê me! Da ku nimêjan (tê de) bikin, vêca dilê hinek mirovan li nik wan ve bibe û fêkiyên reng û reng rizqê wan bikî da ku şukrê te bikin." Dayika Îsmaîl, Îsmaîl dimêjand û ji wê avê vedixwar heta ku ava di meşkê de xelas bû. Vêca ew têhn/tî bû û kurê wê jî têhn bû. Hacerê destpêkir li Îsmaîl nihêrî ku wî ji tîbûna xwe digindirand –yan jî erd pihîn dikir–. Vêca Hacer ji bo ku nedixwest kurê xwe di wê rewşê de bibîne meşiya. Vêca Girê Sefayê dît ku nêzîktirê girên erdê ye ji Ke'bê ve. Li ser wê rawestiya û berê xwe da newalê û nihêrî; gelo ka li wê derê wê kesekî bibîne? Wê tu kes nedît. Vêca ji Sefayê berjêr bû heta ku gihîşte newalê, da ku li lingê wê neale/nelefe deyl û dawê xwe hildan û paşê bi leza însanê ku rastî karekî pir zor hatiye lezand heta ku ji newalê derbas bû. Paşê hate Girê Merwayê, li ser wê jî rawestiya û nihêrî; gelo ka li wê derê wê kesekî bibîne? Wê tu kes nedît. Hacerê ev yeka heft caran tekrar kir." 'Ebdullahê kurê 'Ebbas (r.) dibêje: Pêxember (s.) got: "Eva ye sedemê se'ya însanan di navbera Sefa û Merwayê de. Îcar wextê Hacer (cara dûmayîkê) derkete ser Merwayê, dengek bihîst û xwe bi xwe got: Tu rind guh bidê! Û paşê guhdarî kir, vêca dîsa ew deng bihîst û (bi aliyê deng ve zivirî) got: Te dengê xwe da bihîstin. Îcar eger li bal te hêviyek hebe tu werî hewara me. Di wê demê de milyaketek li cem cihê zemzemê hate dîtin. Vêca wî milyaketî bi pahniya xwe –yan jî bi baskê xwe– erd kola heta ku av derkete holê. Vêca Hacerê destpêkir çarmedorê avê kir hewz û aliyekî jî (bi vî awayî) av çeng dikir û dikire meşkê. Lê av piştî ku çeng dikir ji destê wê dibeliqî û derdiket." Di senedekê de: Bi qasî ku dihate çeng kirin. 'Ebdullahê kurê 'Ebbas (r.)

  

dibêje: Pêxember (s.) got: “Xwedê te‘ala rehmê li dayika Îsmaîl bike. Eger wê Zemzem li ser rewşa wê bihîşta –yan jî got: Eger ava wê çeng nekira– wê bibûya kaniyek herikî.” Rawî dibêje: Pêxemberê Xwedê (s.) domand û got: Vêca Hacerê ew av vexwar û zaroke xwe mijand. Ewî milyaketî ji Hacerê re got: Hûn ji zayîbûn û windabûnê netirsin. Lewra bêguman ev dera ciyê Beytullahê ye. Bêguman ev zarok û bavê wî, dê Beytullahê ava bikin. Û Xwedê te‘ala ehlê wê tu cara zayî‘/wenda nake. Wî çaxî Beyt ji erdê wekî girekî bilind bû, vêca lehî dihat û aliyê wê yê rastê û yê çepê dikola. Hacer di vê rewşê de bû, heta ku kerwanekî êla Curhûmiyan –yan jî civatek ji ehlê mala wan– ji rêya Kedayê dihatin û li jêra Mekkê war danîn. Curhûmiyan hinek teyr dîtin ku devdorê ava Zemzemê digerin. Vêca wan gotin: Bêguman ev teyrê hanê li ser avê digerin. Ya rastî em bi vê newalê dizanin, tê de av tune. Îcar wan qasidek yan jî du qasid (ê sivik û çeleng) şandine wê derê. Îcar wextê wan ava Zemzemê dîtin, zivirîn û agahiya hebûna avê dane hevalên xwe. Vêca ew jî hatine bal avê dîtin ku dayika Îsmaîl li cem avê ye û vêca gotin: Tu destûra me didî ku em li cem te warê xwe deynin? Hacerê (r.) jî got: Belê. Lê tu heqê we di avê de tune. Wan gotin: Baş e.” ‘Ebdullahê kurê ‘Ebbas (r.) dibêje: Pêxember (s.) got: “Dayika Îsmaîl eva dît ku wê ji hogiriyê û ulfetê hez dikir. Vêca ewan war danîn û ji ehl û zar û zêçên xwe re jî agahî şandin. Ew jî hatin cem wana bi cih bûn. Heta ku bûne xwedîmal. Kurê Hacerê Îsmaîl gihîşt û ji Curhûmiyan zimanê ‘Erebî hîn bû. Wextê di xortaniya xwe de bi exlaqê xwe yê xweş êla Curhûmiyan mest kir û pir kêfa wan pê re hat. Îcar wextê Îsmaîl gihîşt û balix bû, Curhûmiyan ew bi keçikeke ji êla xwe re zewicandin. Dayika Îsmaîl piştî zewaca Îsmaîl mir. Îcar Îbrahîm (e.) piştî zewaca Îsmaîl hat ku paşhîştiyê xwe (Îsmaîl û Hacerê) bibîne. Lê Îsmaîl nedît û ji jinika wî pirsa wî kir. Wê got: Ew çû ku rizqê me peyda bike. –Di senedekê de: Ew ji bo me çû nêçîrê.– Paşê Hz. Îbrahîm (e.) pirsa hal û rewşa wan jê kir. Ewê got: Em di rewşek xerab de ne, em pir di tengasî û destengiyê de ne û gazinda halê xwe kir. Hz. Îbrahîm (e.) got: Wextê mêrê te hat tu silavê min lê bike û jê re bêje bila şêmûka/derîzan deriyê xwe biguherîne. Îcar wextê Îsmaîl (s.) hate malê, wek bi tiştekî hesya bû, got: Tu kes hate malê? Wê got: Belê, kalekî wiha wiha hat û pirsa te ji me kir. Min jî ew agahdar kir û vêca wî pirsa hal û rewşa me ji min kir, min jî agahî dayê ku em di tengasî û destengiyê de ne. Hz. Îsmaîl got: Wî tu şîret li te kir? Wê got: Belê, wî emrê min kir ku ez silava li te bikim û got: Şêmûka deriyê xwe biguherîne. Îcar Hz. Îsmaîl got: Ew, bavê min e û emrê min kiriye ku ez te

berdim. Vêca tu here malbavê xwe. Hz. Îsmaîl ew jinik berda û jineke din ji êla Curhûmiyan mahr kir. Hz. Îbrahîm (e.) muddekî –ku Xwedê te'ala dixwest– ji wan dûr ket û paşê hate cem wan. Dîsa ewî kurê xwe Hz. Îsmaîl nedît û vêca çû bal jinika wî. Pirsa Hz. Îsmaîl kir. Jinika Hz. Îsmaîl got: Ew, çû ku rizqê me peyda bike. Hz. Îbrahîm (e.) got: Rewşa we çawa ye? Pirsa hal û rewşa wan jê kir. Ewê got: Em di rewşek xêr û fireh de ne. Û wê hemd û senayê Xwedê te'ala kir. Hz. Îbrahîm (e.) got: Xwarina we çi ye? Ewê got: Goşt e. Hz. Îbrahîm (e.) got: Lê vexwarina we çi ye? Ewê got: Av e. Îcar Hz. Îbrahîm (e.) got: Xwedayo! Tu goşt û ava wan ji wan re pîroz bikî." (Rawî dibêje:) Pêxember (s.) got: "Wî çaxî dexl û zadê wan tunebû, eger hebûya Hz. Îbrahîm ji wan re derbarê wê de jî wê dua bikira." (Rawî dibêje:) Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Kî di xeynê Mekkê de av û goşt bixwe, wekî kêrhatina di Mekkê de, kêrî sihheta wî nayê."

Di senedekê de: Hz. Îbrahîm (e.) hat û got: Îsmaîl li kuderê ye? Jinika Hz. Îsmaîl got: Ew çû nêçîrê; kerem ke berjêr be ku bixwî û vexwî. Hz. Îbrahîm (e.) got: Xwarin û vexwarina we çi ye? Ewê got: Xwarina me goşt e û vexwarina me jî av e. Îcar Hz. Îbrahîm (e.) got: Xwedayo! Tu goşt û ava wan ji wan re pîroz bikî." (Rawî dibêje:) Ebû Qasim (s.) got: "Eva bereketa duayê Hz. Îbrahîm e. Hz. Îbrahîm (e.) got: Wextê mêrê te hat tu silavê min lê bike, jê re bêje û emrê wî bike bila şêmûka deriyê xwe neguherîne. Îcar wextê Îsmaîl (e.) hate malê got: Tu kes hate malê? Ewê got: Belê, kalekî xweşrû hat, pesnê wî da, û pirsa te ji min kir. Min jî ew agahdar kir û vêca wî pirsa jîn û rewşa me ji min kir, min jî agahî dayê ku em di xêr û xweşiyê de ne. Hz. Îsmaîl got: Wî tu şîret li te kir? Wê got: Belê, wî silav li te kirin û emrê tî kir ku tu şêmûka derê xwe neguherînî. Îcar Hz. Îsmaîl got: Ew, bavê min e û tu jî şêmûkî. Bavê min emrê min kiriye ku ez te bihêlim û bernedim. Hz. Îbrahîm (e.) muddekî ku Xwedê te'ala dixwest, ji wan dûr ket. Paşê piştî demekê hat û Hz. Îsmaîl nêzîkî Zemzemê di binê dareke mezin de dît ku tîra xwe serast dikir. Wextê Hz. Îsmaîl bavê xwe dît li pêş wî ve rabû û (wan her duyan hevdu hemêz kirin) wekî reftara bavan bi zarokê xwe û reftara zarokan jî bi bavê xwe re (yanî, hurmet û hezkirin nîşanî hevdu dan.) Hz. Îbrahîm (e.) got: Hey Îsmaîl! Xwedê te'ala emrê min kir ku ez karekî bikim. Hz. Îsmaîl jî got: Rebbê te çi emrê te kiriye tu bikî. Hz. Îbrahîm (e.) got: Tu yê arîkariya min bikî? Hz. Îsmaîl got: Ezê arîkariya te bikim. Hz. Îbrahîm (e.) got: Bêguman Xweda te'ala emrê min kir ku ez li vê derê (girekî bilind li dora Zemzemê nîşan da) beytekê ava bikim. Vêca li wê derê bingehên Ke'beyê bilind kirin. Hz.

Îsmaîl kevir dianîn û Hz. Îbrahîm (e.) jî ava dikir. Heta wextê ku avahî bilind bû Hz. Îsmaîl ev kevirê hanê anî û ji Hz. Îbrahîm (e.) re danî. Vêca Hz. Îbrahîm (e.) jî rabû ser wî kevirî. Ew beyt ava dikir û Hz. Îsmaîl jî kevir didane destê wî û wan her dukan wiha digotin: Xwedayê me! Ji me qebûl bike. Bi rastî her tu yî guhdar û zana."

Di senedekê de: Hz. Îbrahîm (e.) bi Îsmaîl û bi dayika wî re derketin, digel wan meşkeke ku tê de av heyî hebû. Vêca dayika Îsmaîl ji wê meşkê av vedixwar û şîrê wê li ser zaroka wê zêde dibû. Heta ku hatine Mekkê. Vêca Hz. Îbrahîm (e.), Hacer danî bin dareke mezin û paşê vegeriya bal ehlê xwe ve. Dayika Îsmaîl da pey wî heta ku gihîşt 'Keda'eyê û li pey wî gazî kir: Ya Îbrahîm! Tu me li hêviya kê dihêlî? Wî got: Li hêvya Xwedê. Vêca wê got: Ez bi parastina Xwedê razî me. Û vegeriya. Wê ji meşkê av vedixwar û şîrê wê li ser zarokê wê zêde dibû, heta ku av xelas bû. Îcar Hacerê got: Ez herim lê binêrim ka ez kesî nabînim?" (Rawî dibêje.) Pêxemberê Xwedê (s.) got: Vêca Hacer çû, hilkişiya Girê Sefayê û li çarmedorê xwe nihêrî û nihêrî, ka kesekî nabîne. Lê tu kes nedît. Wextê ew gihîşte newalê, wê lezand û hate Girê Merwayê. Hacerê ev çûyin û hatin heft caran tekrar kir. Paşê got: Ez herim lê binêrim ka zarok çi dike? Çû lê nihêrî, dît ku zarok (Îsmaîl) li ser rewşa xwe ya berê ye û herwekî ji mirinê re dike helkehelk. Dilê wê rehet nebû û dîsa got: Ez herim lê binêrim ka ez kesî nabînim? Vêca çû, hilkişiya Girê Sefayê û li çarmedorê xwe nihêrî û nihêrî. Lê tu kes nedît, heta ku çûyin û hatina navbera Sefa û Merwayê heft caran temam kir. Paşê got: Ez herim lê binêrim ka zarok çi dike? Di wê demê de dengek bihîst. Vêca got: Heger li bal te xêrek hebe tu werî hewara me û di wê demê de Hz. Cibrîl dît." Pêxemberê Xwedê (s.) got: Îcar Hz. Cibrîl bi vî awayî bi pahniya xwe erd –Pêxemberê Xwedê (s.) bi pahniyê xwe li erdê dixist– dikola û vêca avê belq da. Li ser vê yekê dayika Îsmaîl şaş ma û ew av çeng kir." Û hedîs bi dirêjiya wê zikir kir. *Buxari bi van senedan hemûyan riwayet kiriye.*

١٨٧٠ - وَعَنْ سَعِيدِ بْنِ زَيْدٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (الْكَمْأَةُ مِنَ الْمَنِّ، وماؤُهَا شِفَاءٌ لِلْعَيْنِ). رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1870- Ji Se'îdê kurê Zeyd (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: Kuwark, ji gezo mennê (xwarina Benî Îsraîliyan) ye û ava wê jî ji çav re şîfa ye." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

# بَابُ الإِسْتِغْفَار
# ÎSTIXFAR (DAXWAZA BEXŞANDINÊ)

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿وَاسْتَغْفِرْ لِذَنْبِكَ وَلِلْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ﴾

"Efûxwaziyê ji bo gunehê xwe û gunehê hemû mêr û jinên bawermendan bike."[1]

﴿وَاستَغْفِرِ اللَّهَ إِنَّ اللَّهَ كَانَ غَفُوراً رَحِيماً﴾

"Efûxwaziyê ji Xweda bike. Bi rastî Xweda pirr 'efûkar û dilovan e."[2]

﴿فَسَبِّحْ بِحَمْدِ رَبِّكَ وَاسْتَغفِرْهُ إِنَّهُ كَانَ تَوَّاباً﴾

"Vêca tu Rebê xwe ji hemî kêmasiyan bişo û efûyê jê bixwaze; lewra ew her tobepejêr e."[3]

﴿لِلَّذِينَ اتَّقَوْا عِنْدَ رَبِّهِمْ جَنَّاتٌ تَجْرِى﴾ إِلَى قَوْلِهِ ﴿وَالْمُسْتَغْفِرِينَ بِالأَسْحَارِ﴾

"Ji bo wanê parêzgerî kirine, ji aliyê Xwedayê wan ve cenneta ku robar di nav re diçin hene û her û her dê tê de bin. Jinên paqij û qayîlbûna Xwedê jî hene. Xwedê bendeyê xwe dibîne. Ewê parêzger in dibêjin: Xwedayo! Bi rastî me bawerî aniye, vêca gunehê me jê bibe û me ji eza û nexweşiya cehennemê biparêze. Ewên bînfireh, rastgo, malmezêx û daxwaza 'efûkirina gunehan ji Xwedê dikin."[4]

﴿وَمَنْ يَعْمَلْ سُوءاً أَوْ يَظْلِمْ نَفْسَهُ ثُمَّ يَسْتَغْفِرِ اللَّهَ يَجِدِ اللَّهَ غَفُوراً رَحِيماً﴾

"Herkesê karekî xerab bike yan sîtemê li xwe bike, paşê daxwaza 'efûyê ji Xwedê bike, dê bibîne ku Xwedê 'efûkar û, dilovan e."[5]

﴿وَمَا كَانَ اللَّهُ لِيُعَذِّبَهُمْ وَأَنْتَ فِيهِمْ وَمَا كَانَ اللَّهُ مُعَذِّبَهُمْ وَهُمْ يَسْتَغْفِرُونَ﴾

Heta tu li nava wan bî, Xwedayê te'ala ezab dê nede wan. Herwiha heta ku ew 'efûya gunehên xwe bixwazin Xweda ezab nade wan.[6]

1 Muhemmed, 47/19.
2 Nîsa, 4/106.
3 Nasr, 110/3.
4 Alî 'Îmran, 3/15-17.
5 Nîsa, 4/110.
6 Enfal, 8/33.

﴿وَالَّذِينَ إِذَا فَعَلُوا فَاحِشَةً أَوْ ظَلَمُوا أَنْفُسَهُمْ ذَكَرُوا اللَّهَ فَاسْتَغْفَرُوا لِذُنُوبِهِمْ وَمَنْ يَغْفِرُ الذُّنُوبَ إِلَّا اللَّهُ وَلَمْ يُصِرُّوا عَلَى مَا فَعَلُوا وَهُمْ يَعْلَمُونَ﴾

*"Ew (parêzger), eger gunehekî dikin yan jî sîtemê li xwe dikin, navê Xwedayê xwe tînine bîra xwe û daxwaza 'efûkirinê ji Xwedê dikin. Ma kî ji xeynê Xwedê gunehan 'efû dike. Ew jî bi zanebûn israrê li ser gunehan nakin."*[1]

Di vê derbarê de ayet pir in û malûm in.

١٨٧١- وَعَنِ الأَغَرِّ الْمُزَنِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِنَّهُ لَيُغَانُ عَلَى قَلْبِي، وَإِنِّي لأَسْتَغْفِرُ اللَّهَ فِي الْيَوْمِ مِائَةَ مَرَّةٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1871- Ji Exerrê Muzenî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman hinek caran hîcab li qelbê min peyda dibe û bêguman di rojê de ez sed carî îstixfar dikim." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٧٢- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: (وَاللَّهِ إِنِّي لأَسْتَغْفِرُ اللَّهَ وَأَتُوبُ إِلَيْهِ فِي الْيَوْمِ أَكْثَرَ مِنْ سَبْعِينَ مَرَّةً). رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1872- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: "Bi sond, di rojê de ez ji heftê carî zehftir bexişandinê ji Xwedê te'ala dixwazim û li bal wî tobe dikim." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٧٣- وَعَنْهُ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ، لَوْ لَمْ تُذْنِبُوا، لَذَهَبَ اللَّهُ تَعَالَى بِكُمْ، وَلَجَاءَ بِقَوْمٍ يُذْنِبُونَ فَيَسْتَغْفِرُونَ اللَّهَ تَعَالَى فَيَغْفِرِ لَهُمْ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1873- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Ez sond dixwim bi wî Xwedayê ku nefsa min di destê wî de ye, eger we guneh nekirana wê Xwedê te'ala hûn bibirana (bimirandana) û di şûna we di wê qewmekî din bianiya ku ewan guneh bikirana û vêca daxwaza bexişandinê ji Xwedê te'ala bikirana û Xwedê jî ew bibexişandana." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٧٤- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ قَالَ: كُنَّا نَعُدُّ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي المَجْلِسِ الْوَاحِدِ مَائَةَ مَرَّةٍ:

1 Alî 'Îmran, 3/135.

رَبِ اغْفِرْ لِي، وَتُبْ عَلَيَّ إِنَّكَ أَنْتَ التَّوَّابُ الرَّحِيمُ. رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ وَالتِّرْمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَنٌ صَحِيحٌ.

1874- Ji Îbnu ‘Umer (r.), got: Me di rûniştinekê de hejmart ku Pêxemberê Xwedê (s.) sed carî got: “Rebbê min! Tu min bibexşînî û toba min qebûl bikî, lewra bêguman tu her tobe qebûlker î, dilovan î.” *Ebû Dawûd û Tirmizî riwayet kirine û Tirmizî gotiye hedîs hesen û sehîh e.*

١٨٧٥- وَعَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (مَنْ لَزِمَ الإِسْتِغْفَارَ، جَعَلَ اللَّهُ لَهُ مِنْ كُلِّ ضِيقٍ مَخْرَجاً، وَمِنْ كُلِّ هَمٍّ فَرَجاً، وَرَزَقَهُ مِنْ حَيْثُ لا يَحْتَسِبُ). رَوَاهُ أَبُو دَاوودَ.

1875- Ji kurê ‘Ebbas (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kî îstixfarê bidomîne wê Xwedê te‘ala ji bo wî; ji temamê tengasiyan wê rêyekê veke, ji her xem û kederan wê firehiyê bidê û ji ciyê ku qet jê hêvîdar nîne wê rizqê wî bidê.” *Ebû Dawûd riwayet kiriye.*

١٨٧٦- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ رَضِيَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: مَنْ قَالَ: (أَسْتَغْفِرُ اللَّهَ الَّذِي لَا إِلَهَ إِلَّا هُوَ الحَيَّ الْقَيُّومَ وَأَتُوبُ إِلَيْهِ، غُفِرَتْ ذُنُوبُهُ وَإِنْ كَانَ قَدْ فَرَّ مِنَ الزَّحْفِ).

رَوَاهُ أَبُو دَاوود وَالتِّرْمِذِي وَالْحَاكِم، وَقَالَ: حَدِيثٌ صَحِيحٌ عَلَى شَرْطِ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٍ.

1876- Ji kurê Mes‘ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: “Kî bêje: Ez daxwaza bexişandin û tobe dikim ji wî Xwedayê ku ji bilî wî tu perestî (Xwedê) nînin, perestiyê dirust ji wî pêvetir tuneye, her mayî û sax e ji herbê reviya be jî gunehê wî tê bexişandin.” *Ebû Dawûd, Tirmîzî û Hakim riwayet kirine û Hakim gotiye ev hedîs bi gorî şertê Buxarî û Muslim sehîh e.*

١٨٧٧- وَعَنْ شَدَّادِ بْنِ أَوْسٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (سَيِّدُ الإِسْتِغْفَارِ أَنْ يَقُولَ الْعَبْدُ: اللَّهُمَّ أَنْتَ رَبِّي، لَا إِلَهَ إِلَّا أَنْتَ خَلَقْتَنِي وَأَنَا عَبْدُكَ، وَأَنَا عَلَى عَهْدِكَ وَوَعْدِكَ مَا اسْتَطَعْتُ، أَعُوذُ بِكَ مِنْ شَرِّ مَا صَنَعْتُ، أَبُوءُ لَكَ بِنِعْمَتِكَ عَلَيَّ، وَأَبُوءُ بِذَنْبِي، فَاغْفِرْ لِي، فَإِنَّهُ لَا يَغْفِرُ الذُّنُوبَ إِلَّا أَنْتَ، وَمَنْ قَالَهَا مِنَ النَّهَارِ مُوقِناً بِهَا، فَمَاتَ مِنْ يَوْمِهِ قَبْلَ أَنْ يُمْسِيَ، فَهُوَ مِنْ أَهْلِ الْجَنَّةِ، وَمَنْ قَالَهَا مِنَ اللَّيْلِ وَهُوَ مُوقِنٌ بها فَمَاتَ قَبْلَ أَنْ يُصْبِحَ،

  

فَهُوَ مِنْ أَهْلِ الجَنَّةِ) رَوَاهُ البُخَارِي.

1877- Ji Şeddadê kurê Ews (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Serwerê îstixfarê ev gotina be: Xwedayo! Tu Rebbê min î, ji xeynî te tu Xwedê tune, te ez afirandime û ez 'ebdê te me, heta ku ez dikarim li ser 'ehd û soza te me. Ez xwe dispêrme te ji gunehê ku min kiriye, ez nîmetê te yê li ser min û gunehê xwe jî îtiraf dikim. Vêca tu min bibexşînî. Lewra ji xeynî te tu kes gunehan nabexşîne. Îcar kî evê îstixfarê bi bawerî bi roj bêje û di wê rojê de beriya ku bibe êvar wefat bike, bêguman ew ji ehlê cennetê ye. Û kî vê îstixfarê bi bawerî bi şev bêje û di wê şevê de beriya ku bibe sibe wefat bike, bêguman ew jî ji ehlê cennetê ye." *Buxarî riwayet kiriye.*

١٨٧٨- وَعَنْ ثَوْبَانَ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا انْصَرَفَ مِنْ صَلاتِهِ، اِسْتَغفَرَ اللَّهَ ثَلاثاً وَقَالَ: (اللَّهُمَّ أَنْتَ السَّلامُ، وَمِنْكَ السَّلامُ، تَبَارَكْتَ يَاذَا الجَلالِ وَالإِكْرَام) قِيلَ لِلأَوْزَاعِيِّ -وهُوَ أَحَدُ رُوَاتِهِ-: كَيْفَ الإِسْتِغْفَارُ؟ قَالَ: يَقُولُ: أَسْتَغْفِرُ الله، أَسْتَغْفِرُ الله. رَوَاهُ مُسْلِم.

1878- Ji Sewban (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) piştî nimêjê sê caran ji Xwedê re îstixfar dianî û wiha digot. *Ellahumme entes-selamu we mînkes-selam, tebarekte ya zel-celalî wel-îkram.* (Ango; Xwedayo! Tu selam î û her selam ji te ye. Ya xwediyê celal û îkramê, tu pîroz bikî)." Ji Ewza'î re, ku ew jî rawiyek e, hate gotin: Îstixfar çawa ye? Ewî got: Tu bêjî: *Estexfirullah.* (Ez daxwaza bexişandinê ji Xwedê dikim). *Estexfirullah.* *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٧٩- وَعَنْ عَائِشَةَ ﷺ قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ الله ﷺ يُكْثِرُ أَنْ يَقُولَ قَبْلَ مَوْتِهِ: (سُبْحَانَ الله وَبِحَمْدِهِ، أَسْتَغْفِرُ الله، وَأَتُوبُ إِلَيْهِ) رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1879- Ji 'Aîşe (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) beriya wefata xwe ev gotin zêde digot: "Subhanellahî we bî hemdîhî estexfirullah we etûbû îleyh. (Ez Xwedê ji wan sifetên ku ne layiqê wî ne tenzîh dikim, ez hemdê wî dikim, ez daxwaza bexişandinê ji wî dikim û ez li bal wî ve tobe dikim)." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٨٠- وَعَنْ أنسٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (قَالَ اللَّهُ تَعَالَى: يَا ابْنَ آدَمَ إِنَّكَ ما دَعَوْتَنِي وَرَجَوْتَنِي غَفَرْتُ لَكَ عَلَى مَا كَانَ مِنْكَ وَلا أُبَالِي، يَا ابْنَ آدَمَ لَوْ بَلَغَتْ ذُنُوبُكَ عَنَانَ السَّمَاءِ، ثُمَّ اسْتَغْفَرْتَنِي، غَفَرْتُ لَكَ وَلَا أُبَالِي، يَا ابْنَ آدَمَ إِنَّكَ لَوْ أَتَيْتَنِي بِقُرَابِ الأَرْضِ خَطَايَا، ثُمَّ لَقِيتَنِي لَا تُشْرِكُ بِي شَيْئاً، لأَتَيْتُكَ بِقُرَابِهَا مَغْفِرَةً) رَوَاهُ التِّرمِذِي، وَقَالَ: حَدِيثٌ حَسَن.

1880- Ji Enes (r.), got: Min ji Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst, wiha digot: Xwedayê te'ala gotiye: "Ey Benî Adem! Bêguman hingî tu gazî min bikî û hêviyê ji min bikî, gunehê te çiqas bibe jî ezê te bibexşînim û ez lê nanêrim. Ey Benî Adem! Gunehê te gihîştibe ewrê asîmanan jî û paşê tu ji min daxwaza bexişandinê bikî ezê te bibexşînim û ez lê nanêrim. Ey Benî Adem! Eger tu bi tijîbûna erdê bi guneha werî bal min û tu rastî min werî, di halê ku te tu tiştek ji bo min nekiribe şirîk de ezê jî bi tijîbûna erdê bi mexfiretê werime bal te." *Tirmizî riwayet kiriye û gotiye, hedîs hesen e.*

١٨٨١- وَعَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (يا مَعْشَرَ النِّسَاءِ تَصَدَّقْنَ، وَأَكْثِرْنَ مِنَ الاسْتِغْفَارِ، فَإِنِّي رَأَيْتُكُنَّ أَكْثَرَ أَهْلِ النَّارِ) قَالَتِ امْرَأَةٌ مِنْهُنَّ: مَا لَنَا أَكْثَرَ أَهْلِ النَّارِ؟ (قَالَ: تكْثِرْنَ اللَّعْنَ، وتَكْفُرْنَ العَشِيرَ مَا رَأَيْتُ مِنْ نَاقِصَاتِ عَقْلٍ وَدِينٍ أَغْلَبَ لِذِي لُبٍّ مِنكُنَّ) قَالَتْ: ما نُقْصَانُ الْعَقْلِ وَالدِّينِ؟ قالَ: (شَهَادَةُ امْرأَتَيْنِ بِشَهَادَةِ رَجُلٍ، وَتَمْكُثُ الأَيَّامَ لا تُصَلِّي) رَوَاهُ مُسلِم.

1881- Ji Îbnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: Ey koma jinan! Hûn sedeqan bidin û zêde îstixfarê bikin. Lewra min dît ku hûn zehftirê ehlê êgir in. Vêca ji wê komê jinekê got: Ji bo çi em zehftirê ehlê êgir in? Ewî (s.) got: Hûn pir lanetê tînin û nankoriya qenciyê dikin. Min kesekî wek we kêm-eql nedîtiye ku li ser eqildaran xalibtir bin. Dîsa ewê jinikê got: Kêmasiya hiş û dîn çi ye? Pêxemberê Xwedê (s.) got: Şahidiya du jinan beramberî şahidiya mêrekî ye û bê nimêjkirin sekna çend rojan e (di rojê 'adet û jîvanê de)." *Muslim riwayet kiriye.*

## بَابُ بَيَانِ مَا أعدَّ الله لِلمُؤْمِنِينَ فِي الْجَنَّةِ

## NÎMETÊN KU XWEDÊ TE'ALA DI CENNETÊ DE AMADE KIRINE

قَالَ اللَّهُ تَعَالَى

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿إِنَّ الْمُتَّقِينَ فِي جَنَّاتٍ وَعُيُونٍ ۞ ادْخُلُوهَا بِسَلَامٍ آمِنِينَ ۞ وَنَزَعْنَا مَا فِي صُدُورِهِمْ مِنْ غِلٍّ إِخْوَاناً عَلَى سُرُرٍ مُتَقَابِلِينَ ۞ لَا يَمَسُّهُمْ فِيهَا نَصَبٌ وَمَا هُمْ مِنْهَا بِمُخْرَجِينَ﴾

"Bi rastî parêzger di nav bax û kaniyan de ne. Bi selametî û emînî herine di nav bax û kaniyan de. Me kerb û kîna di dilê wan de heyî anî der, vêca ew bira (wekî birayê hev) li ser textan beramberî hevdu ne. Tê de (cennetê de) nawestin û ew jê nayêne derxistin."[1]

﴿يَا عِبَادِ لَا خَوْفٌ عَلَيْكُمُ الْيَوْمَ وَلَا أَنْتُمْ تَحْزَنُونَ ۞ الَّذِينَ آمَنُوا بِآيَاتِنَا وَكَانُوا مُسْلِمِينَ ۞ ادْخُلُوا الْجَنَّةَ أَنْتُمْ وَأَزْوَاجُكُمْ تُحْبَرُونَ ۞ يُطَافُ عَلَيْهِمْ بِصِحَافٍ مِنْ ذَهَبٍ وَأَكْوَابٍ وَفِيهَا مَا تَشْتَهِيهِ الأَنْفُسُ وَتَلَذُّ الأَعْيُنُ وَأَنتُمْ فِيهَا خَالِدُونَ ۞ وَتِلْكَ الْجَنَّةُ الَّتِي أُورِثْتُمُوهَا بِمَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ۞ لَكُمْ فِيهَا فَاكِهَةٌ كَثِيرَةٌ مِنْهَا تَأْكُلُونَ﴾

"Ey bendeyê min! Îro ne tirs ji bo we heye û ne jî hûn dê xemgîn bibin. Ewên bawerî anîne û xwe spartine Xwedê herine cennetê, hûn û jinên we, dê xweşiyê bibînin. Firaxê zêr (ê xwarinê) û badîn (vexwarina paqij), li ber wan têne gerandin. Dil çi bixwaze û çav bavêje çi di cennetê de heye. Hûn her û her dê tê de bimînin. Ev cennet, ji ber kar û kiryarên we yên ku we di dunyayê de kirine, gihîştiye we. Ji bo we tê de (ji xeynê xwarin û vexwarinê) gelek fêkiyên ji hemû rengan hene û hûnê jê bixwin."[2]

﴿إِنَّ الْمُتَّقِينَ فِي مَقَامٍ أَمِينٍ ۞ فِي جَنَّاتٍ وَعُيُونٍ ۞ يَلْبَسُونَ مِنْ سُنْدُسٍ وَإِسْتَبْرَقٍ مُتَقَابِلِينَ ۞ كَذَلِكَ وَزَوَّجْنَاهُمْ بِحُورٍ عِينٍ ۞ يَدْعُونَ فِيهَا بِكُلِّ فَاكِهَةٍ آمِنِينَ ۞ لَا يَذُوقُونَ فِيهَا الْمَوْتَ إِلَّا الْمَوْتَةَ الأُولَى وَوَقَاهُمْ عَذَابَ الْجَحِيمِ ۞ فَضْلاً مِنْ رَبِّكَ ذَلِكَ هُوَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُ﴾

1 Hîcr, 15/45-48.
2 Zuxruf, 43/68-73.

"Bi rastî parêzger û mirovê Xwedê di cihekî de ne; di nav bax û kaniyan de ne. Kincê hevrîşim yê teng û stûr dikine ber xwe û beramberê hevdu rûdinên. A cennet wisa ne. Me ew bi periyên çavgir re zewicandine. Bêtirs, ew hemû rengên fêkiyên di cennetê de dixwazin (û dixwin). Ji xeynê mirina xwe ya yekem (ku mirina dunyayê ye), mirinê nabînin û (Xwedê) ew ji ezayê cehennemê parastine. Eva keremek e ji Xwedayê te (daye wan) û eva ye rizgariya mezin."[1]

﴿إِنَّ الأَبْرَارَ لَفِي نَعِيمٍ ۝ عَلَى الأَرَائِكِ يَنْظُرُونَ ۝ تَعْرِفُ فِي وُجُوهِهِمْ نَضْرَةَ النَّعِيمِ ۝ يُسْقَوْنَ مِنْ رَحِيقٍ مَخْتُومٍ ۝ خِتَامُهُ مِسْكٌ وَفِي ذٰلِكَ فَلْيَتَنَافَسِ الْمُتَنَافِسُونَ ۝ وَمِزَاجُهُ مِنْ تَسْنِيمٍ ۝ عَيْناً يَشْرَبُ بِهَا الْمُقَرَّبُونَ﴾

"Hingî xweşmirov û xwedanas hebin, dê di cennetê de bin. Dê li ser textê çarçovekirî, berê xwe bidine wê xêra ku Xwedê ji bo wan berhevkiriye. Tu dê nîşanê xweşiyê di çavê wan de bibînî. Dê ji meyeke sermor (bimor) vexwin. Dûmayîka wê vexwarinê tama miskê dide. Vêca bila pêşbaz pêşbaziyê, a ji bo vê bikin. Têkiliya wê ji kaniyeke zêde bi qedr e di cennetê de. Kaniyek e ku xwedanas û xweşmirov jê vedixwin."[2]

١٨٨٢- وَعَنْ جَابِرٍ ﷺ قَالَ: قالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (يَأْكُلُ أَهْلُ الجَنَّةِ فِيهَا، وَيَشْرَبُونَ، وَلَا يَتَغَوَّطُونَ، وَلَا يَمْتَخِطُونَ، وَلَا يَبُولُونَ، ولكِنْ طَعَامُهُمْ ذَلِكَ جُشَاءٌ كَرَشْحِ المِسْكِ، يُلْهَمُونَ التَّسْبِيحَ وَالتَّكْبِيرَ، كَمَا يُلْهَمُونَ النَّفَسَ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1882- Ji Cabir (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Ehlê cennetê di cennetê de dixwin, vedixwin, narîn, fiş nakin û namîzin. Lê xwarina wan dibe xwêdan ji laşê wan diherike û bêhna wê xwêdanê jî mîna bêhna miskê ye. Çawa ku ji bêhnstandinê kêf digrin wisa jî ji tesbîh û tekbîran kêf digrin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٨٣- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ الله ﷺ: (قَالَ اللَّهُ تَعَالَى: أَعْدَدْتُ لِعِبَادِيَ الصَّالِحِينَ مَا لَا عَيْنٌ رَأَتْ، وَلَا أُذُنٌ سَمِعَتْ، وَلَا خَطَرَ عَلَى قَلْبِ بَشَرٍ، وَاقْرَؤُوا إِنْ شِئْتُمْ: (فَلَا تَعْلَمُ نَفْسٌ مَا أُخْفِيَ لَهُمْ مِنْ قُرَّةِ أَعْيُنٍ جَزَاءً بِمَا كَانُوا يَعْمَلُونَ-السَّجْدَة١٧). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1 Duxan, 44/51-57.
2 Muteffifîn, 83/22-28.

1883- Ji Ebû Hureyre (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Xwedayê te'ala gotiye: Min ji bo 'ebdê xwe yên salih û qenc tiştên wisa amade kiriye ku ne çavan dîtine, ne guhan bihîstine û ne jî li ser qelb û dilê beşerekî waqi' bûye. Hûn eger dixwazin vê ayetê bixwînin: "Kes nizane çi xelat jibo wan hatiye veşartin, çavê wan pê ronî bibin û bi dîtina wî şad bibin ji ber wan kar û kiryarên wan dikirin." *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

١٨٨٤- وَعَنْهُ قَالَ: قالَ رَسُولُ الله ﷺ: (أَوَّلُ زُمْرَة يَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ عَلَى صُورَةِ الْقَمَرِ لَيْلَةَ الْبَدْرِ، ثُمَّ الَّذِينَ يَلُونَهُمْ عَلَى أَشَدِّ كَوْكَبٍ دُرِّيٍ فِي السَّمَاءِ إِضَاءَةً، لا يَبُولُونَ وَلَا يَتَغَوَّطُونَ، وَلَا يَتْفُلُونَ، وَلَا يَمْتَخِطُونَ أَمْشَاطُهُمُ الذَّهَبُ، وَرَشْحُهُمُ المِسْكُ، وَمَجامِرُهُمُ الأَلْوَّةُ -عُودُ الطِّيبِ - أَزْوَاجُهُمُ الْحُورُ الْعِيْنُ، عَلَى خَلْقِ رَجُلٍ وَاحِدٍ، عَلَى صُورَةِ أَبِيهِمْ آدَمَ سِتُّونَ ذِرَاعاً فِي السَّمَاءِ). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَفِي رِوَايَةٍ لِلْبُخَارِيِّ وَمُسْلِمْ: (آنِيَتُهُمْ فِيهَا الذَّهَبُ، وَرَشْحُهُمُ المِسْكُ، وَلِكُلِّ وَاحِدٍ مِنْهُمْ زَوْجَتَانِ يُرَى مُخُّ سُوقِهِما مِنْ وَرَاءِ اللَّحْمِ مِنَ الْحُسْنِ، لَا اِخْتِلَافَ بَيْنَهُمْ، وَلَا تَبَاغُضَ: قُلُوبُهُمْ قَلْبٌ وَاحِدٍ، يُسَبِّحُونَ اللَّهَ بُكْرَةً وَعَشِيّاً)

1884- Dîsa ji wî (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Ewilê civata ku daxilî cennetê dibin li ser sûretê hîva çardehrojî ne û paşê yên ku li pey wan tên li ser sûretê ronahiya stêrkê asîmanan de ne. Ew namîzin, narîn, tif nakin û fiş nakin. Şehê wan zêr in, xwêdana wan misk e, baxurdana wan ji dara 'ûdê ye û jinên wan hûrul-'în in. Ew, li ser xulqiyeta yek mirovekî ne, ser sûretê bavê xwe Adem in û di asîmanan de bejna wan şêst zend e. *Buxarî û Muslim riwayet kirine.*

Di senedeke Buxarî û Muslim de: Di cennetê de firaxê wan zêr in, xwêdana wan misk e û ji her yekî re du jin hene ku ji rindayê û bedewtiyê mêjiyê teşkê wan di bin goşt de tê dîtin. Di navbera wan de tu îxtilaf û bûxz tune. Qelbê wan qelbê yek mirovî ye û ew sibeh û êvaran tesbîhê Xwedê dikin."

١٨٨٥- وَعَنِ الْمُغِيرَةِ بْنِ شُعْبَةَ ﷺ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (سَأَلَ مُوسَى ﷺ رَبَّهُ، مَا أَدْنَى أَهْلِ الْجَنَّةِ مَنْزِلَةً؟ قَالَ: هُوَ رَجُلٌ يَجِيءُ بَعْدَ مَا أُدْخِلَ أَهْلُ الجَنَّةِ الْجَنَّةَ، فَيُقَالُ لَهُ:

  

أُدْخُلِ الْجَنَّةَ، فَيَقُولُ: أَيْ رَبِّ كَيْفَ وَقَدْ نَزَلَ النَّاسُ مَنَازِلَهُمْ، وَأَخَذُوا أَخَذَاتِهِمْ؟ فَيُقَالُ لَهُ: أَتَرْضَى أَنْ يَكُونَ لَكَ مِثْلُ مُلْكِ مَلِكٍ مِنْ مُلُوكِ الدُّنْيَا؟ فَيَقُولُ: رَضِيتُ رَبِّ، فَيَقُولُ: لَكَ ذلِكَ وَمِثْلُهُ وَمِثْلُهُ وَمِثْلُهُ وَمِثْلُهُ، فَيَقُولُ فِي الْخَامِسَةِ: رَضِيتُ رَبِّ، فَيَقُولُ: هَذَا لَكَ وَعَشْرَةُ أَمْثَالِهِ، وَلَكَ مَا اشْتَهَتْ نَفْسُكَ، وَلَذَّتْ عَيْنُكَ فَيَقُولُ: رَضِيتُ رَبِّ، قَالَ: رَبِّ فَأَعْلَاهُمْ مَنْزِلَةً؟ قَالَ: أُولَئِكَ الَّذِينَ أَرَدْتُ، غَرَسْت كَرَامَتَهُمْ بِيَدِي، وَخَتَمْتُ عَلَيْهَا، فَلَمْ تَرَ عَيْنٌ، وَلَمْ تَسْمَعْ أُذُنٌ، وَلَمْ يَخْطُرْ عَلَى قَلْبِ بَشَرٍ). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1885- Ji Muxîre kurê Şu'be (r.), ji Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Hz. Mûsa (e.) ji Rebbê xwe pirsî: Dereca ehlê cennetê yê berjêrtir û nizimtir kîjan e? Xwedayê te'ala got: Ew mirovê ku piştî ku ehlê cennetê daxilî cennetê tê kirin û tê, vêca ji wî re tê gotin: Tu jî daxilî cennetê bibe. Lê ew mirovê bêje: Rebbê min! Ezê çawa daxilî cennetê bibim di halê ku însan çûne cihê xwe û mukafatên xwe jî hilgirtine. Vêca ji wî re wê bê gotin: Tu qayîl dibî ku wekî mulkê padîşahek ji padîşahê dunyayê mulkê te hebe? Ewê bêje: Ez pê qayîl im, Rebbê min. Vêca Xwedê te'ala wê bêje: Ew jî ji te re û wekî wî jî, wekî wî jî, wekî wî jî, wekî wî jî ji te re. Ew mirov di cara pêncan de wê bêje: Ez pê qayîl im, Rebbê min. Rebbê 'alemê wê bêje: Ev jî ji te re ye û deh qatê wê jî ji te re ye, yek jî dilê te here çi û çavê te ji çi zewqê hilde ew jî ji te re ye. Ewê bêje: Ez pê qayîl im, Rebbê min." Hz. Mûsa dibêje: Rebbê min! Dereca ehlê cennetê ya bilintir kîjan e? Xwedê te'ala dibêje: Ew, kesên wisan in ku min ew bijartine û min keramet û mukafata wan bi destê xwe di cennetê de çikandiye û mohr kiriye. Û tu çavî ew keramet nedîtiye, tu guhî nebihîstiye û li ser qelb û dilê tu beşerekî jî waqi' nebûye." *Muslim riwayet kiriye.*

١٨٨٦- وَعَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: (إِنِّي لَأَعْلَمُ آخِرَ أَهْلِ النَّارِ خُروجاً مِنْهَا، وَآخِرَ أَهْلِ الْجَنَّةِ دُخُولاً الْجَنَّةَ، رَجُلٌ يَخْرُجُ مِنَ النَّارِ حَبْواً، فَيَقُولُ الله عَزَّ وَجَلَّ لَهُ: اِذْهَبْ فَأَدْخُلِ الْجَنَّةَ، فَيَأْتِيهَا، فَيُخَيَّلُ إِلَيْهِ أَنَّهَا مَلْأَى، فَيَرْجِعُ، فَيَقُولُ: يَا رَبِّ وَجَدْتُهَا مَلْأَى فَيَقُولُ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ لَهُ: اِذْهَبْ فَأَدْخُلِ الجَنَّةَ، فَيَأْتِيهَا، فَيُخَيَّلُ إِلَيْهِ أَنَّهَا مَلْأَى، فَيَرْجِعُ. فَيَقُولُ: يَا رَبِّ وَجَدْتُهَا مَلْأَى فَيَقُولُ الله عَزَّ وَجَلَّ لَهُ: اِذْهَبْ فَأَدْخُلِ

الْجَنَّةَ، فَإِنَّ لَكَ مِثْلَ الدُّنْيَا وَعَشرةَ أَمْثَالِهَا أَوْ إِنَّ لَكَ مِثْلَ عَشْرَةِ أَمْثَالِ الدُّنْيَا، فَيَقُولُ: أَتَسْخَرُ بِي، أَوْ تَضْحَكُ بِي وَأَنْتَ المَلِكُ) قَالَ: فَلَقَدْ رَأَيْتُ رَسُولَ الله ﷺ ضَحِكَ حَتَّى بَدَتْ نَوَاجِذُه فَكَانَ يقُولُ: (ذلِكَ أَدْنَى أَهْلِ الْجَنَّةِ مَنْزِلَةً) رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1886- Ji kurê Mes'ûd (r.), got: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Bêguman ez dûmayîka ehlê êgir yê ji aliyê derketina ji êgir ve û dûmayîka ehlê cennetê jî ji aliyê daxilbûna bi cennetê dizanim kî ye? Ew mirov e ku ji êgir bi çarpîkan dertê û vêca Xwedê te'ala ji wî re dibêje: Tu herî têkevî cennetê. Ewê jî here cennetê. Lê wê wisa zen bike ku cennet tijî ye. Wê vegere û bêje: Rebbê min! Min cennet tijî dît. Xwedê ('ezze we celle) wê ji wî re bêje: Tu herî û daxilî cennetê be. Ewê jî dîsa here cennetê. Lê wê dîsa wisa zen bike ku cennet tijî ye. Wê vegere û bêje: Rebbê min! Min cennet tijî dît. Dîsa Xwedê ('ezze we celle) ji wî re wê bêje: Tu herî û daxilî cennetê be. Bêguman bi qasî dunyayê û deh qatê wê jî ji te re ye, yan jî bi qasî deh qatî dunyayê ji te re ye. Li ser vê yekê ew mirov dê bêje: Qey tu tinazê xwe bi min dikî yan jî tu bi min dikenî, ya rastî tu serwerê (temamê kaînatê yî)?" Rawî dibêje: Bi sond, min dît Pêxemberê Xwedê (s.) wisa keniya heta ku diranê wî yên kursiya xuya bûn. Û wiha digot. Ev mirov berjêrtirînê ehlê cennetê ye ji aliyê derecê ve." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٨٧ - وَعَنْ أبي مُوسَى الأَشْعَرِي ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ لِلْمُؤْمِنِ فِي الْجَنَّةِ لَخَيْمَةً مِنْ لُؤْلُؤَةٍ وَاحِدَةٍ مُجَوَّفَةٍ طُولُهَا فِي السَّمَاءِ سِتُّونَ مِيلاً، لِلْمُؤْمِنِ فِيهَا أَهْلُونَ، يَطُوفُ عَلَيْهِمُ المُؤْمِنُ فَلَا يَرَى بَعْضُهُمْ بَعْضاً) رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1887- Ji Ebû Mûsayê Eş'erî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye: "Bêguman di cennetê de ji mu'min re konekî ji yek durrî heye ku nava wê vala ye û dirêjaya wî jî di asîmanan de şêst mîl e. Di cennetê de zar û zêçên mu'min hene û mu'min têne serlêdana wan ji ber dirêjaya kon hinekên wan hinekan nabînin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٨٨ -وَعَنْ أبي سَعِيدِ الْخُدْرِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ فِي الْجَنَّةِ لَشَجَرَةً يَسِيرُ الرَّاكِبُ الْجَوَادَ المُضَمَّرَ السَّرِيعَ مِائَةَ سَنَةٍ ما يَقْطَعُهَا). رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

وَرَوَيَاهُ فِي الصَّحِيحَيْنِ أَيضاً مِنْ رِوَايَةِ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: (يَسِيرُ الرَّاكِبُ فِي ظِللهَا مَائَةَ سَنَةٍ لَا يَقْطَعهَا)

1888- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.), Pêxember (s.) gotiye: "Di cennetê de darek (Tuba) heye siwarê hespeke mahir, jêhatî û bi lez sed salî di bin wê darê de bimeşe dîsa jî qada wê xelas nake." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

Dîsa Muslim û Buxarî di Sehîheynê de ji Ebû Hureyre (r.) rîwayet kirine: Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Siwar di binê siha wê darê de sed salî bimeşe jî dîsa jî qada wê xelas nake."

١٨٨٩- وَعَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: (إِنَّ أَهْلَ الْجَنَّةِ لَيَتَرَاءونَ أَهْلَ الْغُرَفِ مِنْ فَوْقِهِمْ كَمَا تَتَرَاءوْنَ الْكَوْكَبَ الدُّرِّيَ الْغَابِرَ فِي الأُفُقِ مِنَ المَشْرِقِ أَوِ المَغْرِبِ لِتَفَاضُلِ مَا بَيْنَهُمْ) قَالُوا: يَا رَسُولَ الله، تِلْكَ مَنَازِلُ الأَنْبِيَاءِ لَا يَبْلُغُهَا غَيْرُهُمْ؟ قَالَ: (بَلَى وَالَّذِي نَفْسِي بِيَدِهِ رِجَالٌ آمَنُوا بِاللَّهِ وَصَدَّقُوا المُرْسَلِينَ) رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1889- Dîsa ji wî (r.), ji Pêxember (s.) gotiye: "Bêguman ehlê cennetê, çawa ku hûn stêrkên ronak dibînin ku di asoya rojhilat yan jî rojavayê de bilind dibin, ew jî ji ber dirêjaya dûrahiya navbera wan de ehlê qesrên ser xwe re dibînin." Sehabiyan gotin: Ya Pêxemberê Xwedê! Ew ciyê Pêxemberan e, gelo ji xeynî wan tu kes nagihêjine wan cihan? Pêxemberê Xwedê (s.): Belê ew ciyê pêxemberan e, lê ez sond dixwim bi wî Xwedayê ku nefsa min bi destê wî ye, mirovê bawerî bi Xwedê anîne û tesdîqa pêxembera kirine ew jî digihêjine wan cihan." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٩٠- وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (لَقَابُ قَوْسٍ فِي الْجَنَّةِ خَيْرٌ مِمَّا تَطْلُعُ عَلَيْهِ الشَّمْسُ أَوْتَغْرِبُ) رَوَاهُ البُخَارِي وَمُسْلِم.

1890- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Di cennetê de cihekî bi qasî kevanekê ji temamê wan tiştên ku roj li ser wan dertê yan jî diçe ava xêrtir e." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٩١- وَعَنْ أَنَسٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (إِنَّ فِي الْجَنَّةِ سُوقاً يَأْتُونَهَا كُلَّ جُمُعَةٍ، فَتَهُبُّ رِيحُ الشِّمَالِ، فَتَحْثُو فِي وُجُوهِهِمْ وَثِيَابِهِمْ، فَيَزْدَادُونَ حُسْناً وَجَمَالاً، فَيَرْجِعُونَ

إِلَى أَهْلِيهِمْ، وَقَدْ اِزْدَادُوا حُسْناً وَجَمَالاً، فَيَقُولُ لَهُمْ أَهْلُوهُمْ: وَاللَّهِ لَقَدِ ازْدَدْتُمْ حُسْناً وَجَمَالاً فَيَقُولُونَ: وَأَنْتُمْ وَاللَّهِ لَقَدِ ازْدَدْتُمْ بَعْدَنَا حُسْناً وَجَمَالاً) رَوَاهُ مُسْلِم.

1891- Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman di cennetê de sûkek heye û ehlê cennetê her roja înê têne wê sûkê. Vêca bayê bakur tê û bêhna cennetê li rû û cilê wan direşîne. Vêca rindayî û bedewiya wan zêde dibe. Îcar ew vedigerine bal ehlê xwe ve ku zehf rind û bedew bûne. Li ser vê yekê ehlê wan dibêjin: Bi sond, hûn pir bedew bûne. Ew jî dibêjin: Hûn jî, bi sond, piştî me pir bedew bûne." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٩٢- وَعَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (إِنَّ أَهْلَ الْجَنَّةِ لَيَتَرَاءوْنَ الْغُرَفَ فِي الْجَنَّةِ كَمَا تَتَرَاءوْنَ الْكَوْكَبَ فِي السَّمَاءِ) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1892- Ji Sehlê kurê Se'd (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman ehlê cennetê di cennetê de qesran dibînin çawa ku hûn (di dunyayê de) stêrkên di asîmanan de dibînin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٩٣- وَعَنْهُ ﷺ قَالَ: شَهِدْتُ مِنَ النَّبِيِّ ﷺ مَجْلِساً وَصَفَ فِيهِ الْجَنَّةَ حَتَّى اِنْتَهَى، ثُمَّ قَالَ فِي آخِرِ حَدِيثِهِ: (فِيهَا مَا لَا عَيْنٌ رَأَتْ، وَلَا أُذُنٌ سَمِعَتْ، وَلَا خَطَرَ عَلَى قَلْبِ بَشَرٍ) ثُمَّ قَرَأَ (تَتَجَافَى جُنُوبُهُمْ عَنِ الْمَضَاجِعِ) إِلَى قَوْلِهِ تَعَالَى (فَلَا تَعْلَمُ نَفْسٌ مَا أُخْفِيَ لَهُمْ مِنْ قُرَّةِ أَعْيُنٍ -السَّجْدَة١٦-١٧) رَوَاهُ الْبُخَارِي.

1893- Dîsa ji wî (r.), got: Ez bi Pêxember (s.) re di civatekê de amade bûm, wî (s.) wesfê cennetê dida heta hate dawî û paşê di dûmayîka axaftina xwe de wiha got: Di cennetê de tiştên wisa hene ku ne çavan dîtine, ne guhan bihîstine û ne jî li ser qelb û dilê beşerekî waqi' bûye." Paşê ev ayet xwend: "Teniştê wan nakevine ser nivînan, bi tirs dua ji Xwedê dikin û ji rizqê me daye wan xêr û sedeqeyan jê didin. Kes nizane çi xelat ji bo wan hatiye veşartin, çavê wan pê ronî bibin û bi dîtina wî şad bibin ji ber wan kar û kiryarê wan dikirin." *Buxarî rîwayet kiriye.*

١٨٩٤- وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ وَأَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: (إِذَا دَخَلَ أَهْلُ الْجَنَّةِ الْجَنَّةَ يُنَادِي مُنَادٍ: إِنَّ لَكُمْ أَنْ تَحْيَوْا فَلَا تَمُوتُوا أَبَداً، إِنَّ لَكُمْ أَنْ تَصِحُّوا فَلَا تَسْقَمُوا

أَبَداً، وَإِنَّ لَكُم أَنْ تَشبوا فَلَا تَهْرَمُوا أَبَداً، وَإِنَّ لَكُمْ أَنْ تَنْعَمُوا، فَلَا تَبْأَسُوا أَبَداً). رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1894- Ji Ebû Se'îd û ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Wextê ehlê cennetê daxilî cennetê dibin gazîkerek gazî dike: Hey ehlê cennetê, bêguman hûnê di cennetê de bêdawî bijîn û tu car namrin, hûnê saxlem bin û tu car nexweş nakevin, hûnê xort bibin û tu car kal nabin, hûnê xwedannîmet bibin û tu car bêhêvî nabin." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٩٥ - وَعَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ، أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (إِنَّ أَدْنَى مَقْعَدِ أَحَدِكُمْ مِنَ الْجَنَّةِ أَنْ يَقُولَ لَهُ: تمنَّى فَيَتَمَنَّى وَيَتَمَنَّى، فَيَقُولُ لَهُ: هَلْ تَمَنَّيْتَ؟ فَيَقُولُ: نَعَمْ، فَيَقُولُ لَهُ: فَإِنَّ لَكَ مَا تَمَنَّيْتَ، وَمِثْلَهُ مَعَهُ) رَوَاهُ مُسْلِمٌ.

1895- Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: Bêguman ji we yê ku di cennetê de cihê wî kêmtir û nizimtir ew mirov e ku Xwedê te'ala wê jê re bêje: Tu bixwaze. Vêca ewê jî bixwaze û bixwaze. Wê jê re bê gotin: Te daxwaz kir. Ewê jî bêje: Belê. Û wê dîsa jê re bê gotin: Tiştê ku te xwestiye jî ji te re ye û mislê wê jî ji te re ye." *Muslim rîwayet kiriye.*

١٨٩٦ - وَعَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (إِنَّ الله عَزَّ وَجَلَّ يَقُولُ لأَهْلِ الْجَنَّةِ: يَا أَهْلَ الْجَنَّةِ، فَيَقُولُونَ: لَبَّيْكَ رَبَّنَا وَسَعْدَيْكَ، وَالْخَيْرُ فِي يَدَيْكَ، فَيَقُولُ: هَلْ رَضِيتُمْ؟ فَيقُولُونَ: وَمَا لَنَا لَا نَرْضَى (يَا رَبَّنَا) وَقَدْ أَعْطَيْتَنَا مَا لَمْ تُعْطِ أَحَداً مِنْ خَلْقِكَ، فَيَقُولُ: أَلَا أُعْطِيكُمْ أَفْضَلَ مِنْ ذَلِكَ فَيقُولُونَ: وَأَي شَيْءٍ أَفْضَلُ مِنْ ذَلِكَ؟ فَيقُولُ: أُحِلُّ عَلَيْكُمْ رِضْوَانِي، فَلَا أَسْخَطُ عَلَيْكُمْ بَعْدَهُ أَبَداً) رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِمٌ.

1896- Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Bêguman Xweda ('ezze we celle) dê ji ehlê cennetê re bêje: Gelî ehlê cennetê! Vêca ewê jî bêjin: Kerem bike Rebbê me, xêr û qencî di destê te de ye. Vêca Xwedê wê bêje: Hûn qayîl in? Ehlê cennetê jî wê bêjin: Em çawa qayîl nînin, lewra nîmetê ku te piştî me nedaye tu kesî te daye me! Xwedê te'ala wê bêje: 'Ez ji ewê zêdetir jî bidime we?' Ehlê cennetê jî wê bêjin: Qey ji vê nîmetê çêtir tiştek heye? Vêca Xwedê te'ala wê bêje: 'Ezê razîbûna xwe birêjînime ser we û ji vir pêde jî ez tu car ji we

  

kesî naxeydim." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٩٧-وَعَنْ جَرِيرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: كُنَّا عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَنَظَرَ إِلَى الْقَمَرِ لَيْلَةَ الْبَدْرِ، وَقَالَ: (إِنكُمْ سَتَرَوْنَ رَبّكُمْ عِيَاناً كَمَا تَرَوْنَ هذَا الْقَمَرَ، لَا تُضَامُونَ فِي رُؤْيَتِهِ)

رَوَاهُ الْبُخَارِي وَمُسْلِم.

1897- Ji Cerîrê kurê 'Ebdullah (r.), got: Em li ba Pêxemberê Xwedê (s.) bûn, wî li heyva çardehrojî dinêrî û vêca got: "Hûn çawa vê heyvê dibînin, hûnê Rebbê xwe jî bibînin û hûn di dîtina wî de jî zehmetiyê nabînin." *Buxarî û Muslim rîwayet kirine.*

١٨٩٨- وَعَنْ صُهَيْب ﷺ، أَنَّ رَسُولَ الله ﷺ قَالَ: (إِذَا دَخَلَ أَهْلُ الْجَنَّةِ الْجَنَّةَ يَقُولُ اللَّهُ تَبَارَكَ وَتَعَالَى: تُرِيدُونَ شَيْئاً أَزِيدُكُمْ؟ فَيَقُولُونَ: أَلَمْ تُبَيِّضْ وُجُوهَنَا؟ أَلَمْ تُدْخِلْنَا الْجَنَّةَ وَتُنَجِّنَا مِنَ النَّارِ؟ فَيَكْشِفُ الْحِجَابَ، فَمَا أعْطُوا شَيْئاً أَحَبَّ إِلَيْهِمْ مِنَ النَّظَرِ إِلَى رَبّهِمْ) رَوَاهُ مُسْلِم.

1898- Ji Suheyb (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Wextê ehlê cennetê daxilî cennetê bibin, Xwedê Tebareke we te'ala wê bêje: Hûn tiştekî naxwazin ku ez zêdetir bidime we? Ehlê cennetê jî wê bêjin: Qey te rûyê me spî nekiriye, te em daxilî cennetê nekirine û te em ji êgir xelas nekirine? Li ser vê yekê Xwedê te'ala wê perdê rake. Êdî ji ehlê cennetê re tiştekî ji dîtina Rebbê 'alemê xweştir nehatiye dayin." *Muslim rîwayet kiriye.*

Xwedayê te'ala gotiye:

﴿إِنَّ الَّذِينَ آمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ يَهْدِيهِمْ رَبُّهُمْ بِإِيمَانِهِمْ تَجْرِى مِنْ تَحْتِهِمُ الأَنْهَارُ فِي جَنَّاتِ النَّعِيمِ ۞ دَعْوَاهُمْ فِيهَا سُبْحَانَكَ اللَّهُمَّ وَتَحِيَّتُهُمْ فِيهَا سَلَامٌ وآخِرُ دَعْوَاهُمْ أَنِ الْحَمْدُ لِلَّهِ رَبّ الْعَالَمِينَ﴾

"Ewên bawerî anîne û kar û kiryarên qenc kirine Xwedê ji ber baweriya wan dê wan rasterê ke cenneta pir xêr û ku çem û robar dibin re diçin. Dua û gaziya wan di cennetê de eva ye: Xwedayo! Em te ji hemû kêmasiyan paqij dikin, duaya wan ji hevdu re silav e û dûmayîka duaya wan eva ye:

Hemû pesn û şikur ji bo Xwedê ye; Xwedayê hemû cîhanan."[1]

الْحَمْدُ لِلَّهِ الَّذِي هَدَانَا لِهَذَا وَمَا كُنَّا لِنَهْتَدِيَ لَوْلَا أَنْ هَدَانَا الله. اللَّهُمَّ صَلِّ عَلَى مُحَمَّدٍ وَعَلَى آلِ مُحَمَّدٍ، كَمَا صَلَّيْتَ عَلَى إِبْرَاهِيمَ وَعَلَى آل إِبْرَاهِيمَ، وَبَارِكْ عَلَى مُحَمَّدٍ، وَعَلَى آلِ مُحَمَّدٍ، كَمَا بَارَكْتَ عَلَى إِبْرَاهِيمَ وَعَلَى آلِ إِبْرَاهِيمَ، إِنَّكَ حَمِيدٌ مَجِيدٌ.

Hemû pesn û şikur ji bo Xwedayê ku em rasterê kirine ji bo vê, eger wî em rasterê nekirina em tu car rasterê nedibûn. Xwedayo! Te çawa rehmet li Îbrahîm û alê wî kiriye tu wisa jî rehmê li Muhemmed û alê wî bike. Û te çawa Îbrahîm û alê wî pîroz kiriye tu wisa Muhemmed û alê wî jî pîroz bike. Lewra tu her şirjawî ji pesn û mezinahiyê re.

***Muellif û nivîskarê vê kitêbê Îmam Yehya Newewî –Xwedê gunehê wî bibexşîne– got: Min ev kitêb roja duşemê çardehê meha Remezanê di sala şeşsed û heftê de li Şamê temam kir.***

1 Yûnus 9-10

# DIYARÎ

Ez vî kar û barê xwe dikim xelat û diyarî ji bo hemû xuşk û birayên misilman û xwendevan û dikim diyarî û xelat ji bo ruhên seyda û mamostayên min ku wan ez terbiye û xwedî kirim û dîsa dikim xelat û diyarî ji bo dayik û bavê xwe ku ew bûn sedemê heyat û hatina min ya dunyayê û wan ez danîm ber xwendinê ew di alema berzexê de xweşhal bin ruhê wan şad û bextewar be, cih û meskenê wan behişt û cennetu'l firdews be. Amîn!.

**Mela Salihê Dihî**

# FERHENGOK

## A

**adan**: 1. xurikên ku ji bo jiyanê pêwest in 2. ber, bereket.
**afirîn**: xuliqîn.
**afirandin**: xuliqandin.
**ala**: beyreq.
**alandin**: pêçandin, lefandin, herbilandin.
**ango**: yanî.
**asûzan**: rewş, pozîsyon.
**avdank**: ew tiştê ku av dikevê.
**awanî**: geremolalozî, teşqele.
**axaftin**: peyivîn.
**azirandin**: azardan, êşandin, arihandin.

## B

**babet**: 1. mijar, dabaş. 2. layiq, şayan
**bajar**: şehr.
**baldar bin**: haydar bin! bi dîqet bin!
**bangewazî**: bang, gazî
**bawerî**: îman
**bawerkirin**: înakirin, îmananîn
**bawermend**: mu'min
**bende**: 1. benî, kole, 2. 'evd.
**bendewar**: hêvîdar
**ber**: kevir.
**berdar**: bi ber bereket.
**berbest**: berbendkirin, pêşî lê girtin.
**berdelan**: erda bi kevir.
**beres**: navê nexweşiyekê ye.
**bêrêtî**: nelirêtî, neqanûnî.
**berevan**: hakem, parêzvan
**berfireh**: ber, fireh.
**berist**: bi rûmet, hêja
**beşer**: mirov, meriv.
**beşûş**: 1. tebessum, bişir 2. devbiken.
**betran**: qurre, nefsmezin, pozbilind.
**bêweç**: bêfêde; erda bêber û bejî.
**bid'e**: ew tiştên ku binyada wan di ayet û hedîsan de tuneye û pişt re bi niyeta îbadetê ketine nava dîn.
**borî**: bihurî, derbasbûyî.
**bost**: bihost, vekirina herpênc tiliyê destan.
**bênijîn**: pişkîn.
**bûyer**: hadîse.

## C

**celat**: ceza.
**candar**: giyanewer.
**celatkirin**: cezakirin.
**cerd**: grûbek ji leşker.
**cil**: kinc, çek.
**cemi'kirin**: komkirin
**cincilî**: 1. zelal 2. parzinandî.

## Ç

**şavdêr**: çavnêr.
**çarpîk**: rêveçûna li ser du dest û du lingan.
**çelqandin**: kilandina/têwerdana tiştên ron.
**çewt**: şaş, xelet.
**çene**: erzing.
**çeng**: 1. bazû 2. çenga dest: nêviyê kulmê, kefa destekî.
**çêrker**: dijûnkar, sixêfkar.
**çilm**: lîçik.
**çiq**: çiqil, gulî, şax.
**çirûsîn**: biriqîn.
**çopandin**: xespkirin.

## D

**dad**: 'edalet.
**dadmend**: bi 'edalet.
**dadrês**: hakim.
**daqurtandin**: dabelihandin.
**debar**: aborî.
**dêmar**: marmarok.
**deqkirin**: çêkirina deq û şanikan li çerm.
**derfet**: îmkan.
**destgirtî**: dergîstî.
**dêm**: 1. hinarokên rû 2. erda bêav.
**dews**: şûn û şopa tiştekî.
**dexesî**: hesûdî, pexîlî.
**dijwar**: çetin, zor.
**dijûn**: çêr, sixêf.
**dilq**: şekl.
**dilsoj**: dilşewat, elîm.
**dilsoz**: bi dil û can.
**dirende**: hov.
**dirûd**: pesn, rehma Xwedê.
**diyarî**: xelat, hediye.
**dojeh**: cehnime, cehennem.
**doşanî**: heywana dotinê.
**dûmayîk**: dewama tiştekî.
**durr**: mirarî, încî.
**dûş**: rêz.

## E

**'edawet**: dijminayî, neyartî.
**ehzab**: *prj.* partî.
**'emilandin**: xebitandin, bikaranîn.
**enî**: alî, cephe.
**enwa'**: *prj.* cure, celeb.
**erk**: vatinî, peywir, wezîfe.
**estûr**: stûr.
**ezwac**: *prj.* jin e.

## Ê

**êwirîn**: rawestîn, bîhnvedan.
**êl**: hoz, 'eşîr.
**'ewret**: cihê ku ji laşê meriv derxistina wî heram e.

## F

**fêkî**: mêwe.
**fezl**: bexş, qencî.
**fêrbûn**: hînbûn.
**ferc**: aletê jin û mêran yê cinsî.
**ferx**: varik.
**filitîn**: rizgarbûn, xelasbûn.
**fisq**: bi kirina gunehên mezin yan îsrara li ser ê biçûk. derketina ji rêya Xwedê.
**fitret**: xuliqiyet.

## G

**gemşe**: gulaş
**gerdûn**: kaînat, 'alem
**gevjol**: porê tevlihevbûyî.
**gewrî**: qirik
**gilî**: gotin, şîkayet
**giram**: bi rûmet
**girîng**: muhîm.
**gongilok**: porê xelek.
**govan**: şahid.
**guncan**: minasib.
**gunehê keba'ir**: gunehê mezin.
**gûzan**: ûstûra.

## H

**hajpêhebûn**: haydarbûn.
**hawîd**: hêcina hêştirê.
**heçku**: maxwene, qaşo, xwedêgiravî.
**hed**: cezayê ku wacib dibe li ser kesan.
**helişandin**: hilweşandin, tepkirin
**hem**: xizmên mêrê jinê, ji bo jinê.
**hemasa**: herdem, hergav.
**hênijîn**: xewarîbûn.
**hêstir**: qantir.
**hêştir**: deve.
**hêvîdarî**: bendewarî.
**hêvotin**: perwerdekirin, terbiyekirin.
**hevok**: cumle.
**hevbeş**: hevpar, şirîk.
**hevpar**: muşterek.
**hevpin**: şirîk.
**hevraz**: kaş.
**hevrîşim**: qumaşê îpek.
**hêz**: qewet.
**hinarî**: peyam, mesaj
**hinartin**: şandin.
**hincet**: 1. behane 2. wesile.
**histûkur**: stûkur, stû.
**hîbe**: diyarî, hediye.
**hûb**: heskirin.

## Î

**î'tîkaf**: bi niyeta xêrê, sekna di mizgevtê de.
**îcad**: çêkirin
**îcar**: nika, vêga.
**infaq**: bexşandina mal di rêya Xweda de.
**îrade**: vîn.
**îstînca**: xwe paqijkirina di avdestxaneyê de.
**îstînşaq**: ji bo paqijkirinê, kişandina avê bi bal firnikê poz ve.
**îskeisk**: niqirîskên dema girî.

## J

**jakaw**: dirende
**jehr**: axû, jar
**jid**: lez.
**jin**: pîrek.
**jîvan**: heyd, dema ku jin dikevin cila.
**jixwe**: zaten.
**jiyan**: jîn, heyat.

## K

**kedanî**: karik, kar.
**karger**: rêveber, kargêr, îdarevan.
**kargerî**: îdare.
**kerîhtir**: siktir, kirêttir.
**kerihandin**: bîzkirin.
**kenêr**: navê dareke ku bêhna berê wê xweş e.
**kerihandin**: bîzkirin.
**kevî**: kenar.
**kezeb**: mêlak.
**kirêt**: sik.
**kit**: fer, witr.
**kîpkirin**: saxlemkirin.
**kunûjîtî**: timatî, çikûsî.
**kûrîn**: giriyê dijwar.

## L

**lam**: dêm, sûret.
**lava**: niyaz, libergerîn.
**lêp**: pêl
**leqîhatin**: rasthatin, pêrghatin.
**lebikîn**: bilîn, mijûlbûn.
**lexab**: gem.
**lîq**: grûbek leşker.

## M

**malbat**: 'aîle.
**maldar**: zengîn, dewlemend.
**mandel**: înkar.
**mandelkirin**: înkarkirin.
**mebest**: mexsed.
**medmede**: ji bo paqijkirinê, têwerdana avê di dev de.
**mehder**: şefa'et.
**mehdervan**: şefa'etkar.
**merdûd**: tiştê ku di dîn de nayê pejirandin.
**mêşgirtin**: nîşangirtin

**mewij**: tiriyê hişkkirî.
**mey**: araq.
**mezixandin**: xerckirin, nifiqandin.
**mijûl**: meşxûl.
**mis**: paxir.
**miştin**: malaştin.
**mizgeft**: camî, mescîd.
**morîstan**: lana moriyan/gêrikan.
**muaxezekirin**: ezabdan.
**mubellîx**: teblîxber; kesê ku jê re teblîx tê kirin.
**mu'exxîr**: navekî Xweda ye, wateya wî: ê (Xwedayê) ku tiştê musteheqî paşxistinê be, bi paş de dixe.
**mukateb**: koleyê ku ji bo azadiya wî, peyman pê re hatiye girêdan li ser pêkanîna tiştekî.
**mukimkirin**: pîtkirin, saxlemkirin.
**munafiq**: ê ku li der ve, xwe misilman nîşan dide lê di hundirê xwe de kafir e.
**muqeddîm**: navekî Xweda ye, wateya wî: ê (Xwedayê) ku tiştê musteheqî pêşxistinê be, bi pêş de dixe.
**mutteli'kirin**: agahdarkirin, haydarkirin.
**Muwette'**: navê kitêbek Îmam Malik e.

## N

**navgîn**: wasîte.
**nagihan**: ji nişka ve, ji nedîtî ve.
**navlêk**: leqeb.
**navlêkê kirêt**: leqebên pîs.
**nepax**: kûre.
**nîgar**: resim, nexş û nimûş.
**nijde**/nejd: seriye, birrek ji leşkeran.
**nimêja ewwabîn**: nimêja duhayê/danê sibeyê.
**notirvan**: nîgehdar, nobetdar.

## O

## P

**pak**: paqij.
**parêzger**: parêzker, muhafezekar.
**paşbêj**: paşgotin, xeybet.
**pawan**: hemî, dehl.
**pêdandin**: peyitandin, çespandin.
**pêdivî**: hewcedarî.
**penahî**: îltîca.
**pejirandin**: qebûlkirin, ecibandin.
**pelandin**: lêgerîna bi destan li tiştekî.
**pêlox**: pereng, kozir.
**pend**: şîret, pêşniyaz.
**pêpeskirin**: xistina bin lingan.
**pêpestkirin**: pêlêkirin.
**pertal**: alav (bi piranî alavê tîcaretê).
**pêkve**: beraber, hemû, tevek.
**peşk**: vîjag, qur'e.
**pêlox**: kozir, pereng.
**pêşmalk**: berdilk, bervank, berkoş.
**pêşû**: kelmêşên hûrik, mirmirk.
**pêşwazî**: pêrgînî.
**pêtiranekirin**: pêtinazkirin.
**pêwist**: lazim, ferz.
**peyman**: soz, mesaj, hinarî.
**peyrew**: tabi'.
**pêşwazî**: pêrgîn.
**pêşwazîkirin**: çûn pêrgîna yekî.
**pidûw**: esmanê devê mirov.
**pîl/pol**: lingê sewalan ê pêşîn.
**pirtî**: parçe.
**pişêw**: peyvên neçê/bêser û ber.
**pişkirin**: parkirin.
**piştrastkirin**: îspatkirin, rastderxistin.
**piyale**: qedeh, îskan.
**pol/pîl**: nigê ajalê yê pêşîn.
**pîrmend**: senator.
**pûte**: îhtîmam.

## Q

**qasid**: resûl.

  

**qad**: meydan, alan.
**qelp**: sexte.
**qet**: parçe.
**qerax**: kêlek, rex
**qesp**: xurme.
**qelew**: candarên bi qelî/goşt.
**qevde**: baq.
**poxîn**: navê xwarinekê ye.
**qevz**: gav, pêngav.
**qevzkirin**: rahiştina/girtina tiştekî bi destan.
**qulaç**: pivana ji serê tiliyan tabi milê dî.

## R

**rabiwartin**: mu'emele.
**raçavkirin**: çavdêrîkirin, çavnêrîkirin.
**raman**: fikir.
**rawestan**: sekinîn, eglebûn.
**rawî**: kesê ku hedîsê radigihîne.
**redbûn**: kutabûn, xelasbûn
**reftar**: tevger.
**req**: hişk.
**rêzan**: rêber, pêşîvan
**rîa'yet**: gurr; golêkirin.
**rikdar**: kîndar, girdar, mûdî.
**risas**: sirb, qela.
**rîwayetkirin**: neqilkirin, ragihandin.
**rûhspî**: pispor, zana.
**ruqye**: 1. dua, nivişt 2. sêr, afsûn.

## S

**sa'**: pîvaneke qasî çar kumlan e.
**sahir**: sêrbaz.
**salix**: salox, xeber; agahiya di der barê bûyerekê.
**se/seg**: kûçik, kutik.
**se'î**: çûn û hatin.
**se'îd**: bihiştî, kesê Xweda jê razî.
**sedem**: sebeb.
**ser û pêpê**: xwarina ser û piyan.
**sereşke**: bermayî, kuzewa, dawşêle.
**serfiraz**: serbilindî.
**serwer**: serok.
**serwerî**: seroktî.
**sîber**: 1. cihê ku tav nadê 2. tiştê ku meriv li binê siya wî rûdine.
**sihik**: sîrke.
**sik**: çewt, xirab, neçak.
**siktir**: kirêttir.
**sincirîn**: germbûna ji tavê an ji tîna agirî.
**spêde**: şefeq.
**sîper**: çeper, talde, stare.
**starger**: parêzkar.
**sîtem**: zilm, neheqî
**sîtembar**: mezlûm, zorlêbûyî.
**sîtemkar**: zalim.
**sîxwer**: cesûs.
**şîrjaw**: abet, layiq.

## Ş

**şape**: ew perçeyê berfa ku ji serê çiya hildiweşe û her ku berjêr tê mezin dibe.
**şareza**: zana, mahir.
**şepirze**: perîşan.
**şehîn**: mêzîn, terazî.
**şermgeh**: êwret, ferc.
**şetele**: bela.
**şeqî**: gunehkar.
**şe'n**: rewş, hal.
**şehda zûr**: govaniya bi derewan.
**şêwr**: li hevdu pirsîn.
**şêwrgeh**: ciyê şêwr lê têkirin.
**şik**: guman.
**şilîl**: xamkêsan, baçîk.
**jipiyan**: kesê nerûniştî, li ser piyan.
**şirjaw**: layiq, babet.
**şiverê**: şivîle, şoprê.
**şiyandar**: kara, tiwana, qadirtiwana.

## T

**tade**: cefa, eziyet
**te'navêj**: şiltax, îftîraker.
**tekoşîn**: mucadele
**tekûz**: rêkûpêk, tam.
**teqwa**: tirsa ji Xwedê.

**tekbîr**: gotina *ellahû ekber*.
**tesbîh**: gotina *subhanellah*.
**tehmîd**: gotina *elhemdu lîllah*.
**temehkar**: çikûs.
**telandin**: xweveşartin.
**temirandin**: vemirandina agirî.
**tengezar**: bêhnteng.
**tepbûn**: xerabbûn, hilweşîn.
**têrdar**: pir bidar.
**terxîb**: teşwîq.
**teşk**: paq.
**teşmît**: ji kesê dipişke re, xwestina bi xêr û bereketê.
**teşk**: çîp, paq.
**te'wîl**: wergerandina peyvê, ji wateya wê ya zahir û eşkera, bi bal wateyeke muhtemel ku muwafiqê ayet û hedîsan be.
**texilîn**: jêvegerîn, jêgerîn.
**teyax**: semaxkirin, tawdan.
**tezkiye**: pak û paqijî.
**tobepejêr**: ê ku tobeyan qebûl dike.
**torim**: çêlika/golika hêştiran.
**tund**: hişk, sert, tûj.

## U

**urt**: zuriyet.

## V

**vejandin**: ji nûv ve saxkirin.
**vawêrkirin**: temîzkirin, veqetandin
**vîn**: îrade.
**vebirî**: kesîn, qet'.
**vir**: derew.

## W

**waqi'bûn**: qewimîn; pêkhatin.
**welat**: war, niştiman.
**wert**: zurriyet.
**wate**: me'ne.
**welhal**: heçku, helbûkî.

## X

**xanûman**: avahî.
**xawênî**: rûmet, şeref.
**xefirandin**: bexişandin, lêborîn, 'efûkirin.
**xefkirin**: veşartin.
**xelîfe**: cîhgir.
**xişikandin**: (bi erdê ve) kişandin.
**xizm**: lêzim, eqreba.
**xîzik**: çixêz.
**xîz**: qûm, şujik.
**xuf**: goreya çermîn a ku ji ber sermayê tê li pêxistin.

## Y

**yadîgar**: xatire.

## Z

**zagon**: qanûn, distûr.
**zayi'kirin**: wendakirin.
**zem**: bedîtî, xerabî.
**zemker**: sebker, 'eybker.
**zend**: ji enîşka dest heya serê tiliyan.
**zîndan**: bendîxane.
**zirx**: zirih.
**zixur**: xîç, bixuşk, kevirên piçûk.